وَمَا لَكُمْ لَا تُقَاتِلُونَ فِي سَبِيلِ اللّٰهِ وَالْمُسْتَضْعَفِينَ مِنَ الرِّجَالِ
وَالنِّسَٓاءِ وَالْوِلْدَانِ الَّذِينَ يَقُولُونَ رَبَّنَٓا اَخْرِجْنَا مِنْ هٰذِهِ الْقَرْيَةِ
الظَّالِمِ اَهْلُهَاۚ وَاجْعَلْ لَنَا مِنْ لَدُنْكَ وَلِيًّاۚ وَاجْعَلْ لَنَا مِنْ لَدُنْكَ
نَصِيرًاۜ ﴿٧٥﴾ اَلَّذِينَ اٰمَنُوا يُقَاتِلُونَ فِي سَبِيلِ اللّٰهِۚ وَالَّذِينَ كَفَرُوا
يُقَاتِلُونَ فِي سَبِيلِ الطَّاغُوتِ فَقَاتِلُٓوا اَوْلِيَٓاءَ الشَّيْطَانِۚ اِنَّ كَيْدَ
الشَّيْطَانِ كَانَ ضَعِيفًاۚ ﴿٧٦﴾ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذِينَ قِيلَ لَهُمْ كُفُّٓوا اَيْدِيَكُمْ
وَاَقِيمُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا الزَّكٰوةَۚ فَلَمَّا كُتِبَ عَلَيْهِمُ الْقِتَالُ اِذَا
فَرِيقٌ مِنْهُمْ يَخْشَوْنَ النَّاسَ كَخَشْيَةِ اللّٰهِ اَوْ اَشَدَّ خَشْيَةًۚ وَقَالُوا
رَبَّنَا لِمَ كَتَبْتَ عَلَيْنَا الْقِتَالَۚ لَوْلَٓا اَخَّرْتَنَٓا اِلٰٓى اَجَلٍ قَرِيبٍۜ قُلْ
مَتَاعُ الدُّنْيَا قَلِيلٌۚ وَالْاٰخِرَةُ خَيْرٌ لِمَنِ اتَّقٰى وَلَا تُظْلَمُونَ فَتِيلًا ﴿٧٧﴾
اَيْنَ مَا تَكُونُوا يُدْرِكْكُمُ الْمَوْتُ وَلَوْ كُنْتُمْ فِي بُرُوجٍ مُشَيَّدَةٍۜ وَاِنْ
تُصِبْهُمْ حَسَنَةٌ يَقُولُوا هٰذِهِ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِۚ وَاِنْ تُصِبْهُمْ سَيِّئَةٌ يَقُولُوا
هٰذِهِ مِنْ عِنْدِكَۜ قُلْ كُلٌّ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِۜ فَمَا لِ هٰٓؤُلَٓاءِ الْقَوْمِ لَا يَكَادُونَ
يَفْقَهُونَ حَدِيثًا ﴿٧٨﴾ مَٓا اَصَابَكَ مِنْ حَسَنَةٍ فَمِنَ اللّٰهِۘ وَمَٓا اَصَابَكَ
مِنْ سَيِّئَةٍ فَمِنْ نَفْسِكَۜ وَاَرْسَلْنَاكَ لِلنَّاسِ رَسُولًاۜ وَكَفٰى بِاللّٰهِ شَهِيدًا ﴿٧٩﴾

**75.** Ma çi bûye ji we ku hûn di rêya Allah de û ji bo mêr û jin û zarokên mustezef (yên jar û belengaz ku alîkarî daxwaz dikin û) dibêjin: “Rabbê me! Me ji vî şarî/ji vî bajarî ku gelê wî zordar in derîne. Xwedîyekî ji cem xwe ji me re bişîne, alîkarekî jî ji cem xwe ji me re bişîne” qîtal/şer nakin.

**76.** Ew ên îmân anîne di rêya Allah de û ew ên kafir jî di rêya taxût de qîtal/şer dikin. (Nexwe) bi dostên şeytan re qîtal/şer bikin. Bêguman hîleyên (kemînên) şeytan herî qels e.

(Ji bo têgeha/qewrama Taxût Bnr: 2/ Baqara, 256.)

**77.** Ma tu nanêrî li wan kesên ku ji wan re hatîye gotin: “Destê xwe (ji şer) bikişînin û nimêja xwe bikin û zekâta xwe bidin.” (Ji bo ku şer li ser wan ferz bibe israr dikirin) lê dema şer li ser wan ferz bû komek ji wan wekî ku ji Allah ditirsîyan hê jê zehftir ji însanan ditirsîyan û wiha digotin: “Rabbê me! Ma çima te li ser me qîtal/şer ferz kir? Ma ne dibû ku heta demeke nêz te muhletê bida me?” Bibêje: “Xweşîya dinyayê kêm e. Ji bo Mutteqîyan axîret çêtir e. Bi qasî mûyekî jî neheqî li we nayê kirin.”

**78.** Hûn li ku dibin bibin -dixwazin di kelehên zexm û asê de bin jî- dîsa wê mirin bi we bigire. Dema xweşîyek bigihîje wan dibêjin: “Ev ji cem Allah e.” Lê dema xerabîyek tê serê wan dibêjin: “Ev, ji rûyê te ye.” Ji wan re bibêje: “Hemû ji Allah in.” Erê ma çi bûye ji vê qewmê ku qet tu gotinê fêm nakin.

**79.** Çi qencîya ku bigihîje te ew ji cem Allah e. Lê her xerabîyeke tê serê te, ji te bixwe ye. Me tu, bi pêxemberî ji însanan re şand. Ji şahidîyê re Allah bes e (ku tu pêxemberê heq î).

(Qur'ana Kerîm, ji hêla xuliqandinê ve her tiştî nisbetê Allah (ac) dike. Lewre çi nîmet be û çi musîbet be tiştên ku însan leqayê wê dibe, xaliqê wan Allah e. Dema ji berhêla sebeban ve bê rênîn Qur'ana Kerîm her cureyên xêrê nisbetê Allah dike û her çeşîdên xerabîyê jî nisbetê însan bixwe dike. Lewre her xêr û nîmetên digihîje însan bi lutf û kerema Allah e (ac). (Bnr. 14/Îbrahîm, 34) Sebebê musîbetên têne serê însan jî ji gunehên wî bixwe ne. (Bnr. 42/Şûrâ, 30))

مَنْ يُطِعِ الرَّسُولَ فَقَدْ اَطَاعَ اللّٰهَۚ وَمَنْ تَوَلّٰى فَمَٓا اَرْسَلْنَاكَ
عَلَيْهِمْ حَفٖيظًاۜ ﴿٨٠﴾ وَيَقُولُونَ طَاعَةٌۘ فَاِذَا بَرَزُوا مِنْ عِنْدِكَ بَيَّتَ
طَٓائِفَةٌ مِنْهُمْ غَيْرَ الَّذٖى تَقُولُۜ وَاللّٰهُ يَكْتُبُ مَا يُبَيِّتُونَۚ
فَاَعْرِضْ عَنْهُمْ وَتَوَكَّلْ عَلَى اللّٰهِۜ وَكَفٰى بِاللّٰهِ وَكٖيلًا ﴿٨١﴾
اَفَلَا يَتَدَبَّرُونَ الْقُرْاٰنَۜ وَلَوْ كَانَ مِنْ عِنْدِ غَيْرِ اللّٰهِ لَوَجَدُوا فٖيهِ
اخْتِلَافًا كَثٖيرًا ﴿٨٢﴾ وَاِذَا جَٓاءَهُمْ اَمْرٌ مِنَ الْاَمْنِ اَوِ الْخَوْفِ
اَذَاعُوا بِهٖۜ وَلَوْ رَدُّوهُ اِلَى الرَّسُولِ وَاِلٰٓى اُولِى الْاَمْرِ مِنْهُمْ لَعَلِمَهُ
الَّذٖينَ يَسْتَنْبِطُونَهُ مِنْهُمْۜ وَلَوْلَا فَضْلُ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ
لَاتَّبَعْتُمُ الشَّيْطَانَ اِلَّا قَلٖيلًا ﴿٨٣﴾ فَقَاتِلْ فٖى سَبٖيلِ اللّٰهِۚ لَا تُكَلَّفُ
اِلَّا نَفْسَكَ وَحَرِّضِ الْمُؤْمِنٖينَۚ عَسَى اللّٰهُ اَنْ يَكُفَّ
بَأْسَ الَّذٖينَ كَفَرُواۜ وَاللّٰهُ اَشَدُّ بَأْسًا وَاَشَدُّ تَنْكٖيلًا ﴿٨٤﴾
مَنْ يَشْفَعْ شَفَاعَةً حَسَنَةً يَكُنْ لَهُ نَصٖيبٌ مِنْهَاۚ وَمَنْ يَشْفَعْ
شَفَاعَةً سَيِّئَةً يَكُنْ لَهُ كِفْلٌ مِنْهَاۜ وَكَانَ اللّٰهُ
عَلٰى كُلِّ شَىْءٍ مُقٖيتًا ﴿٨٥﴾ وَاِذَا حُيّٖيتُمْ بِتَحِيَّةٍ فَحَيُّوا بِاَحْسَنَ
مِنْهَٓا اَوْ رُدُّوهَاۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَلٰى كُلِّ شَىْءٍ حَسٖيبًا ﴿٨٦﴾

**80.** Kî îtaetî Rasûl bike, qet bêguman wî îtaetî Allah kiriye. Kî jî jê rû vegerîne me tu ji wan re bi parêzkarî neşandîye!

**81.** Dibêjin “Em ê îtaet bikin. Lê dema ji cem te derdikevin diçin, qismekî wan bi dizî/di şevê de, tiştên ku te gotibû, diguherînin/pevgirêdidin. Allah ew tiştê ku ewana bi şev/bi dizî pevgirêdabûn dinivîse. Tu rû ji wan vegerîne û tewekkulê Allah bike. Wek wekîl Allah bes e.

**82.** Ma ew li Qur'anê (bi maneyên wê ya kûrekûr bi baldarî) nafikirin? Eger ew ji Allah pê ve ji cihekî din hatibûya, wê tê de gelek nakokî/berçewtî bidîtana.

**83.** Dema ji wan re xeberek (der heqê) ewlehîyê de an jî li ser tirsê dihat, (ne digotin ka bandora vê xeberê di encamê de qenc e an xerab e) di cih de wê belav dikin. Eger ku wan ew xeber (berî ku ji hinekan re vebibêjin) ji pêxember re an jî ji rêveberên xwe re birana, ji wan ew ên ku jê hikum derdixistin û bi heqîqeta wê jî bizanibûna (ka ev xeber rast e an derew e û bi feyde ye an jî zerar e). Eger li ser we fedl û rahmeta Allah nebûna, ji hindikî we pê ve dê we hemûyan bida pey şeytan.

**84.** Di rêya Allah de şer/qîtal bike. Tu ji xwe tenê mesûl î û mumînan jî teşwîqê qîtalê bike. Hêvî dibe ku Allah hêza kafiran (ku li ser mumînan dibe sebebê zext û tehdehîyê) asteng bike. Lewre hêza Allah xurttir e û cezayê wî jî herî dijwartir e.

**85.** Kî di karekî qenc (û bi xêr) de şefaetê (navçîtîyê) bike, wê jê re parek jê hebe. Kî jî ji karekî xerab re şefaetê (navçîtîyê) bike, wê jê re jî parek (ji wê xerabîyê) hebe. Allah (xwedî hêz û parêzkar û çavnêr û yê ku riziq dide) Mûqît e.

**86.** Dema silav li we hate kirin, hûn jî bi silaveke ji wê xweşiktir an jî wekî ya li we hate kirin wê silavê vegerînin. Bêguman Allah li ser her tiştî (bînendeya hisabê) Hesîb e.




اَللّٰهُ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۜ لَيَجْمَعَنَّكُمْ اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ لَا رَيْبَ فٖيهِۜ
وَمَنْ اَصْدَقُ مِنَ اللّٰهِ حَدٖيثًا ﴿٨٧﴾ فَمَا لَكُمْ فِي الْمُنَافِقٖينَ فِئَتَيْنِ
وَاللّٰهُ اَرْكَسَهُمْ بِمَا كَسَبُواۜ اَتُرٖيدُونَ اَنْ تَهْدُوا مَنْ اَضَلَّ
اللّٰهُۜ وَمَنْ يُضْلِلِ اللّٰهُ فَلَنْ تَجِدَ لَهُ سَبٖيلًا ﴿٨٨﴾ وَدُّوا لَوْ تَكْفُرُونَ
كَمَا كَفَرُوا فَتَكُونُونَ سَوَٓاءً فَلَا تَتَّخِذُوا مِنْهُمْ اَوْلِيَٓاءَ حَتّٰى
يُهَاجِرُوا فٖي سَبٖيلِ اللّٰهِۜ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَخُذُوهُمْ وَاقْتُلُوهُمْ حَيْثُ
وَجَدْتُمُوهُمْۖ وَلَا تَتَّخِذُوا مِنْهُمْ وَلِيًّا وَلَا نَصٖيرًاۙ ﴿٨٩﴾ اِلَّا الَّذٖينَ
يَصِلُونَ اِلٰى قَوْمٍ بَيْنَكُمْ وَبَيْنَهُمْ مٖيثَاقٌ اَوْ جَٓاؤُ۫كُمْ حَصِرَتْ
صُدُورُهُمْ اَنْ يُقَاتِلُوكُمْ اَوْ يُقَاتِلُوا قَوْمَهُمْۜ وَلَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ
لَسَلَّطَهُمْ عَلَيْكُمْ فَلَقَاتَلُوكُمْۚ فَاِنِ اعْتَزَلُوكُمْ فَلَمْ يُقَاتِلُوكُمْ
وَاَلْقَوْا اِلَيْكُمُ السَّلَمَۙ فَمَا جَعَلَ اللّٰهُ لَكُمْ عَلَيْهِمْ سَبٖيلًا ﴿٩٠﴾
سَتَجِدُونَ اٰخَرٖينَ يُرٖيدُونَ اَنْ يَاْمَنُوكُمْ وَيَاْمَنُوا قَوْمَهُمْۜ
كُلَّمَا رُدُّٓوا اِلَى الْفِتْنَةِ اُرْكِسُوا فٖيهَاۚ فَاِنْ لَمْ يَعْتَزِلُوكُمْ وَيُلْقُٓوا
اِلَيْكُمُ السَّلَمَ وَيَكُفُّٓوا اَيْدِيَهُمْ فَخُذُوهُمْ وَاقْتُلُوهُمْ حَيْثُ
ثَقِفْتُمُوهُمْۜ وَاُو۬لٰٓئِكُمْ جَعَلْنَا لَكُمْ عَلَيْهِمْ سُلْطَانًا مُبٖينًاۚ ﴿٩١﴾

**87.** Allah... Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh nîn e. Di roja qiyametê de ku tê de qet guman tune dê we bicivîne. Ma ji Allah çêtir xwedî gotina rast kî heye?

**88.** Ma çi bûye ji we ku hûn der heqê munafiqan (ew ên hîcret nekirine) de bûne du firqe (û di mumîntî an kafirtîya wan de nîqaşê dikin)? Lê bele Allah ji ber tiştên ku bi dest xistine wan (munafiqan) serberjêr kiriye. (Nexwe hûn) dixwazin ku ew ên Allah wan xerifandîye bigihînin hîdayetê? Eger Allah kesekî bixerifîne êdî tu nikarî ji bo wî rêyekî (xelasîyê) bibînî.

**89.** (Ew munafiq) daxwaz dikin wekî ku ketine kufrê we jî têxin kufrê û hûn bi wan re wekhev bibin. Hetanî di rêya Allah de hîcret nekin, ji wan tu kesî dost negirin. Eger ew (ji hicretê) rû vegerînin wan bigirin û li cihê ku we ew zeft kirin de wan bikujin. Ji wan ne dostek û ne jî alîkarek bigirin.

**90.** Ew ên ku xwe avêtine (bextê) qewmekî ku di nava we û wan de peyman heye yan jî ji bo ku naxwazin bi we re an jî bi qewmê xwe re şer bikin (û ji ber vê yekê) dilê wan tengezar dibe (naxwazin bi herdu alîyê re jî şer bikin) û tên cem te, têkilî wan nebin (wan nekujin). Eger Allah bixwesta dê wan musselletê we bikirana û dê bi we re şer bikirana. Eger ew dev ji we berdin û bi we re şer nekin û destê sulhê/aştîyê dirêjî we bikin di vê rewşê de Allah, di aleyha wan de tu rê nedaye we.

**91.** Hûn ê hinekên din jî bibînin ku dixwazin hem ji we emîn bibin û hem jî ji qewmê xwe bi ewle bibin. Her cara ku îmtîhan dibin, xwe serberjêrkî davêjin (navê). Eger ew destên xwe bernedin û daxwaza emanê li we nekin û (ji şerê we) destên xwe venekêşin êdî wan bigirin û hûn li ku rastî wan hatin wan bikujin. Me di aleyha wan de delîleke/rayeyeke eşkere daye we.

وَمَا كَانَ لِمُؤْمِنٍ اَنْ يَقْتُلَ مُؤْمِنًا اِلَّا خَطَـًٔا ج
وَمَنْ قَتَلَ مُؤْمِنًا خَطَـًٔا فَتَحْرِيرُ رَقَبَةٍ مُؤْمِنَةٍ
وَدِيَةٌ مُسَلَّمَةٌ اِلٰٓى اَهْلِهٖٓ اِلَّآ اَنْ يَصَّدَّقُوا ط فَاِنْ كَانَ
مِنْ قَوْمٍ عَدُوٍّ لَكُمْ وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَتَحْرِيرُ رَقَبَةٍ
مُؤْمِنَةٍ ط وَاِنْ كَانَ مِنْ قَوْمٍ بَيْنَكُمْ وَبَيْنَهُمْ
مِيثَاقٌ فَدِيَةٌ مُسَلَّمَةٌ اِلٰٓى اَهْلِهٖ وَتَحْرِيرُ رَقَبَةٍ مُؤْمِنَةٍ ج
فَمَنْ لَمْ يَجِدْ فَصِيَامُ شَهْرَيْنِ مُتَتَابِعَيْنِ ز
تَوْبَةً مِنَ اللّٰهِ ط وَكَانَ اللّٰهُ عَلِيمًا حَكِيمًا ﴿٩٢﴾
وَمَنْ يَقْتُلْ مُؤْمِنًا مُتَعَمِّدًا فَجَزَٓاؤُهُ جَهَنَّمُ خَالِدًا
فِيهَا وَغَضِبَ اللّٰهُ عَلَيْهِ وَلَعَنَهُ وَاَعَدَّ لَهُ عَذَابًا عَظِيمًا ﴿٩٣﴾
يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُٓوا اِذَا ضَرَبْتُمْ فٖى سَبِيلِ اللّٰهِ فَتَبَيَّنُوا
وَلَا تَقُولُوا لِمَنْ اَلْقٰٓى اِلَيْكُمُ السَّلَامَ لَسْتَ مُؤْمِنًا ج
تَبْتَغُونَ عَرَضَ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا ز فَعِنْدَ اللّٰهِ مَغَانِمُ كَثِيرَةٌ ط
كَذٰلِكَ كُنْتُمْ مِنْ قَبْلُ فَمَنَّ اللّٰهُ عَلَيْكُمْ
فَتَبَيَّنُوا ط اِنَّ اللّٰهَ كَانَ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرًا ﴿٩٤﴾

**92.** Ji xeynî bi xeta/bi xeletî be, qet nabe ku mumînek (muteammîden/bi qestî) mumînekî din bikuje. Kesê ku bi xeletî mumînekî bikuje (kefareta wî) azadkirina koleyekî mumîn û ji bo malbata meqtûl (yê kuştî) dayîna dîyetê ye. Eger malbata meqtûl (yê kuştî) dîyetê bibexşîne (dev jê berde) ne tê de. Eger meqtûl ji malbatek mumîn û ji qewmekî ku dijminê we be, azadkirina koleyekî mumîn lazim e. Eger (ew meqtûl) ji qewmekî ku di navbera we de peyman heyî be, ji malbata wî re dîyet û azadkirina koleyekî mumîn lazim e. Kesê ku evana nebîne (nikaribe pêk bîne) ji bo ku Allah tobeya wî qebûl bike divê du mehan li pey hev (bê navber) rojî bigire. Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**93.** Kî bi qestî/muteammîden mumînekî bikuje, cezayê wî cehennem e ku tê de bêdawî dimîne. Allah li kesê wiha hatîye xezebê û lanet lê kiriye û ji bo wî ezabekî mezin amade kiriye.

**94.** Gelî ew ên îmân anîne! Dema ku hûn di rêya Allah de derketin seferê (ji bo ku hûn emîn bibin) meseleyan rave bikin. Kesê ku silavê dide we, ji bo menfaetên dinyewî nebêjin. ‘Tu ne mumîn î.’ (Hal ev e ku) li îndallah/li cem Allah pirzêde xenîmet hene. Berîya vê hûn jî wekî wan bûn. Lê Allah (bi hîdayetê û xelaskirina kufrê) li we qencî kir. (Ji bo ku emîn bibin) meseleyan rave bikin. Bêguman Allah ji hemû tiştên ku hûn dikin agahdar e.

لَا يَسْتَوِي الْقَاعِدُونَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ غَيْرُ اُولِي الضَّرَرِ وَالْمُجَاهِدُونَ
فِي سَبِيلِ اللّٰهِ بِاَمْوَالِهِمْ وَاَنْفُسِهِمْ فَضَّلَ اللّٰهُ الْمُجَاهِدِينَ بِاَمْوَالِهِمْ
وَاَنْفُسِهِمْ عَلَى الْقَاعِدِينَ دَرَجَةً وَكُلًّا وَعَدَ اللّٰهُ الْحُسْنٰى وَفَضَّلَ
اللّٰهُ الْمُجَاهِدِينَ عَلَى الْقَاعِدِينَ اَجْرًا عَظِيمًا ﴿٩٥﴾ دَرَجَاتٍ مِنْهُ
وَمَغْفِرَةً وَرَحْمَةً وَكَانَ اللّٰهُ غَفُورًا رَحِيمًا ﴿٩٦﴾ اِنَّ الَّذِينَ تَوَفّٰيهُمُ
الْمَلٰٓئِكَةُ ظَالِمِٓي اَنْفُسِهِمْ قَالُوا فِيمَ كُنْتُمْ قَالُوا كُنَّا مُسْتَضْعَفِينَ
فِي الْاَرْضِ قَالُٓوا اَلَمْ تَكُنْ اَرْضُ اللّٰهِ وَاسِعَةً فَتُهَاجِرُوا فِيهَا فَاُولٰٓئِكَ
مَاْوٰيهُمْ جَهَنَّمُ وَسَٓاءَتْ مَصِيرًا ﴿٩٧﴾ اِلَّا الْمُسْتَضْعَفِينَ مِنَ الرِّجَالِ
وَالنِّسَٓاءِ وَالْوِلْدَانِ لَا يَسْتَطِيعُونَ حِيلَةً وَلَا يَهْتَدُونَ سَبِيلًا ﴿٩٨﴾
فَاُولٰٓئِكَ عَسَى اللّٰهُ اَنْ يَعْفُوَ عَنْهُمْ وَكَانَ اللّٰهُ عَفُوًّا غَفُورًا ﴿٩٩﴾
وَمَنْ يُهَاجِرْ فِي سَبِيلِ اللّٰهِ يَجِدْ فِي الْاَرْضِ مُرَاغَمًا كَثِيرًا وَسَعَةً
وَمَنْ يَخْرُجْ مِنْ بَيْتِهِ مُهَاجِرًا اِلَى اللّٰهِ وَرَسُولِهِ ثُمَّ يُدْرِكْهُ الْمَوْتُ
فَقَدْ وَقَعَ اَجْرُهُ عَلَى اللّٰهِ وَكَانَ اللّٰهُ غَفُورًا رَحِيمًا ﴿١٠٠﴾ وَاِذَا ضَرَبْتُمْ
فِي الْاَرْضِ فَلَيْسَ عَلَيْكُمْ جُنَاحٌ اَنْ تَقْصُرُوا مِنَ الصَّلٰوةِ اِنْ خِفْتُمْ
اَنْ يَفْتِنَكُمُ الَّذِينَ كَفَرُوا اِنَّ الْكَافِرِينَ كَانُوا لَكُمْ عَدُوًّا مُبِينًا ﴿١٠١﴾

**95.** Ji mumînan ew ên bê ûzr (ji cîhadê paş ve mane û) runiştî ne û ew ên bi mal û canê xwe fîsebîlîllah cîhad dikin ne wekhev in. Allah ew ên bi mal û canê xwe cîhad kirine bi dereceyekî ser wan ên runiştî re girtîye. (Ligel vê) Allah weada xweşîyê daye hemûyan. Allah, wan ên mucahîd bi mikafateke mezin di ser ên runiştî re girtîye.

**96.** (Ev ecira mezin) ji Allah derecât û mexfîret û rahmet e. Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**97.** Dema melâîket rohê wan kesên ku li nefsa xwe zilim kirine distîne, dibêjin: “Hûn di çi karî de bûn/hûn di kîjan sefî de bûn?” Dibêjin: “Em li ser erdê mustezef (ew ên bi kotekî di sefên muşrîkan de û bêçare) bûn.” (Melâiket) dibêjin: “Ma qey erdê Allah ne fireh bû ku we hîcret bikirana?” Sitargeha wan cehennem e. Ew der çi cihekî xerab e!

**98.** Lê ji mêr û jin û zarokên mustezef ên bêçare (ku ji bo hîcretê) rêyekî nabînin ne tê de.

**99.** Hêvî heye ku Allah wan efû bike. Lewre Allah, (yê ku gunehan efû dike) Afûw û (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr e.

**100.** Kî di rêya Allah de hîcret bike wê li ser erdê gelek cih û (di her mijarî de) firehîyê bibîne. Kî ji bo Allah û Rasûlê wî, bi nîyeta hîcretê ji mala xwe derkeve û paşê mirin bi wî bigire mikafata wî li ser Allah e. Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**101.** Dema hûn li ser rûyê erdê derkevin seferekê û hûn bi fikar/bi mitala bin ku kafir zerarê bidin we (wê gavê) di qesirkirina/di kurtkirina nimêjê de ji we re guneh tune. Bêguman ew ên kafir ji bo we dijminên eşkere ne.

وَاِذَا كُنْتَ فِيهِمْ فَاَقَمْتَ لَهُمُ الصَّلٰوةَ فَلْتَقُمْ طَٓائِفَةٌ مِنْهُمْ
مَعَكَ وَلْيَاْخُذُٓوا اَسْلِحَتَهُمْ فَاِذَا سَجَدُوا فَلْيَكُونُوا
مِنْ وَرَٓائِكُمْ وَلْتَاْتِ طَٓائِفَةٌ اُخْرٰى لَمْ يُصَلُّوا فَلْيُصَلُّوا
مَعَكَ وَلْيَاْخُذُوا حِذْرَهُمْ وَاَسْلِحَتَهُمْ وَدَّ الَّذِينَ كَفَرُوا
لَوْ تَغْفُلُونَ عَنْ اَسْلِحَتِكُمْ وَاَمْتِعَتِكُمْ فَيَمِيلُونَ عَلَيْكُمْ
مَيْلَةً وَاحِدَةً وَلَا جُنَاحَ عَلَيْكُمْ اِنْ كَانَ بِكُمْ اَذًى
مِنْ مَطَرٍ اَوْ كُنْتُمْ مَرْضٰٓى اَنْ تَضَعُٓوا اَسْلِحَتَكُمْ
وَخُذُوا حِذْرَكُمْ اِنَّ اللّٰهَ اَعَدَّ لِلْكَافِرِينَ عَذَابًا مُهِينًا ﴿١٠٢﴾
فَاِذَا قَضَيْتُمُ الصَّلٰوةَ فَاذْكُرُوا اللّٰهَ قِيَامًا وَقُعُودًا وَعَلٰى جُنُوبِكُمْ
فَاِذَا اطْمَاْنَنْتُمْ فَاَقِيمُوا الصَّلٰوةَ اِنَّ الصَّلٰوةَ كَانَتْ
عَلَى الْمُؤْمِنِينَ كِتَابًا مَوْقُوتًا ﴿١٠٣﴾ وَلَا تَهِنُوا فِي ابْتِغَٓاءِ الْقَوْمِ
اِنْ تَكُونُوا تَاْلَمُونَ فَاِنَّهُمْ يَاْلَمُونَ كَمَا تَاْلَمُونَ وَتَرْجُونَ
مِنَ اللّٰهِ مَا لَا يَرْجُونَ وَكَانَ اللّٰهُ عَلِيمًا حَكِيمًا ﴿١٠٤﴾
اِنَّٓا اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكَ الْكِتَابَ بِالْحَقِّ لِتَحْكُمَ بَيْنَ النَّاسِ
بِمَٓا اَرٰيكَ اللّٰهُ وَلَا تَكُنْ لِلْخَٓائِنِينَ خَصِيمًا ﴿١٠٥﴾

**102.** (Di rewşa şerê an tirsê de) dema ku tu di navbera wan de bî û li pêşîya wan nimêj bikî (wiha bike): Bila komek jî bi te re (li ser nimêjê) bisekinin û çekên xwe jî li cem xwe bigirin. (Ew ên di nimêjê de ne) wextê çûn secdê bila ew ên din (ji bo ku we biparêzin) li pişt we bisekinin. (Koma ewil dema nimêja xwe qedand, bila rabin.) Piştre koma ku nimêj nekirine bila werin û bi te re nimêj bikin. Bila tedbîra xwe bistînin û çekên xwe jî li cem xwe bigirin. Kafir dixwazin ku hûn ji çek û eşyayên xwe xafil bimînin û di vî halî de bi carekî/ji nîşkave êrîşê bavêjin ser we. Eger hûn ji baranê zerarekî bibînin an jî hûn nexweş bin û hûn çekên xwe deynin erdê ji we re guneh tune. Tedbîrê xwe bistînin! Bêguman Allah ji bo kafiran ezabekî riswaker amade kiriye.

**103.** Dema we nimêja xwe xelas kir, li pîyan û runiştî an jî li ser teniştên xwe (dirêjkirî) Allah zikir bikin. Dema ku (rewşa tirsê bihûrî û) hûn gihane hizûrê/aramîyê nimêja xwe bi temamî (wek mûqîm) bikin. Bêguman nimêj li ser mumînan ferzeke wextên wê diyarkirî ye.

**104.** (Ji bo dûvketina neyarên xwe dema hûn hatin gazîkirin xesar û westabûna şer nekin hincet û) hûn di mijara dûvketin û girtina koma (dijminê xwe de) nekevin sistahîyê. Eger hûn diêşin ew jî weke we diêşin. Bi ser de, tiştên (wekî rizaya îlâhî û xêr û cennet) ku ew hêvî nakin hûn ji Allah hêvî dikin. Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**105.** Ji bo tu di navbera însanan de wekî ku Allah nîşanî te daye hikum bikî me Kitêb ji te re nazil kiriye. Ji xayînan re ne be alîgir/parêzvan.

(Meqseda nuzûla Qur'ana Kerîm di van ayetan de beyan bûye: Ji bo tunekirina/dabinkirina îxtîlafên navbera însanan (2/Baqara, 213), pejirandina qanûna bingehîn (makeqanûn) û di navbera însanan de hikumkirina pê (4/Nîsa, 105), mizgînî dayîna ji mumînan re û tirsandina/qurifandina kafiran (19/Meryem, 97) hişyarkirina hemû heyînan û pêk anîna hûccetullah (25/Furqân, 1; 6/En'âm, 19), fikirîna/ramandina li ser ayetên wê û şîret girtina jê (38/ Sâd, 29), rêkirin û xirikandina însanan ji bo bawerîya yekgirtina/tewhîdkirina Allah û îbadetkirina bitenê jê re (11/Hûd, 1-2), ji bo derxistina însanan ji tarîtîyan araste kirin/tewcîh kirina bi ronahîya îslâmê ve (14/Îbrahîm, 1), ji bo sebatkirin û rê pêşkirina/rê nîşandana mumînan (16/Nahl, 102) û ji bo ku ji mumînan re bibe rahmet û şîfa (17/Îsrâ, 82)...)

وَاسْتَغْفِرِ اللّٰهَ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ غَفُورًا رَح۪يمًا ﴿١٠٦﴾ وَلَا تُجَادِلْ
عَنِ الَّذ۪ينَ يَخْتَانُونَ اَنْفُسَهُمْ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ مَنْ كَانَ
خَوَّانًا اَث۪يمًا ﴿١٠٧﴾ يَسْتَخْفُونَ مِنَ النَّاسِ وَلَا يَسْتَخْفُونَ
مِنَ اللّٰهِ وَهُوَ مَعَهُمْ اِذْ يُبَيِّتُونَ مَا لَا يَرْضٰى مِنَ الْقَوْلِ
وَكَانَ اللّٰهُ بِمَا يَعْمَلُونَ مُح۪يطًا ﴿١٠٨﴾ هَٓا اَنْتُمْ هٰٓؤُلَٓاءِ جَادَلْتُمْ
عَنْهُمْ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا فَمَنْ يُجَادِلُ اللّٰهَ عَنْهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ
اَمْ مَنْ يَكُونُ عَلَيْهِمْ وَك۪يلًا ﴿١٠٩﴾ وَمَنْ يَعْمَلْ سُٓوءًا
اَوْ يَظْلِمْ نَفْسَهُ ثُمَّ يَسْتَغْفِرِ اللّٰهَ يَجِدِ اللّٰهَ غَفُورًا رَح۪يمًا ﴿١١٠﴾
وَمَنْ يَكْسِبْ اِثْمًا فَاِنَّمَا يَكْسِبُهُ عَلٰى نَفْسِه۪ وَكَانَ اللّٰهُ
عَل۪يمًا حَك۪يمًا ﴿١١١﴾ وَمَنْ يَكْسِبْ خَط۪ٓيـَٔةً اَوْ اِثْمًا ثُمَّ يَرْمِ
بِه۪ بَر۪ٓيـًٔا فَقَدِ احْتَمَلَ بُهْتَانًا وَاِثْمًا مُب۪ينًا ﴿١١٢﴾ وَلَوْلَا فَضْلُ
اللّٰهِ عَلَيْكَ وَرَحْمَتُهُ لَهَمَّتْ طَٓائِفَةٌ مِنْهُمْ اَنْ يُضِلُّوكَ
وَمَا يُضِلُّونَ اِلَّٓا اَنْفُسَهُمْ وَمَا يَضُرُّونَكَ مِنْ شَيْءٍ وَاَنْزَلَ
اللّٰهُ عَلَيْكَ الْكِتَابَ وَالْحِكْمَةَ وَعَلَّمَكَ مَا لَمْ
تَكُنْ تَعْلَمُ وَكَانَ فَضْلُ اللّٰهِ عَلَيْكَ عَظ۪يمًا ﴿١١٣﴾

**106.** Ji Allah mexfîretê bixwaze! Bêguman Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**107.** (Bi kirina dizîyê) ew ên ku li nefsa xwe îxanet kirine tu wan neparêze. Bêguman Allah ji wan gunehkarên ku di xayîntîyê de pêş de çûne hez nake.

**108.** (Dema guneh dikin xwe) ji însanan vedişêrin û ji Allah venaşêrin. (Hal ev e ku Allah,) dema wan di şevê de karê ku Allah jê ne razî bû pevgirêdidan ew bi wan re bû. Allah, li ser kar û kirinên wan (yê ku her tiştî hawîrdor zeft kiriye) Muhît e.

**109.** Heydê em bibêjin ku we di heyata dinyayê de ew parastin! Belê, roja qiyametê li hember Allah wê kî wan biparêze an jî kî wê ji wan re wekîltîyê bike?

**110.** Kî xerabîyekî bike an jî li nefsa xwe zilim bike û paşê ji Allah mexfîretê bixwaze wê bibîne ku Allah (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**111.** Kî jî gunehekî kiribe wî, ew di aleyha xwe de kiriye. Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**112.** Kî jî xetayekî an jî gunehekî bi dest xistibe, paşê bavêje ser masûmekî, bêguman wî bêbextî û gunehekî vikîvekirî li xwe bar kiriye.

**113.** Eger lutf û rahmeta Allah li ser te nebûya, komekê ji wan dixwestin ku te bixerifînin. Ew bitenê dikarin xwe bixerifînin û qet nikarin zerarê bidin te. Lewre Allah ji te re Kitêb û hikmet nazil kir û tiştên ku te pê nizanîbû hînî te kir. Lutf û îhsana Allah li ser te pir mezin e.

لَا خَيْرَ فِي كَث۪يرٍ مِنْ نَجْوٰيهُمْ اِلَّا مَنْ اَمَرَ بِصَدَقَةٍ
اَوْ مَعْرُوفٍ اَوْ اِصْلَاحٍ بَيْنَ النَّاسِۜ وَمَنْ يَفْعَلْ
ذٰلِكَ ابْتِغَٓاءَ مَرْضَاتِ اللّٰهِ فَسَوْفَ نُؤْت۪يهِ اَجْرًا عَظ۪يمًا ﴿١١٤﴾
وَمَنْ يُشَاقِقِ الرَّسُولَ مِنْ بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُ الْهُدٰى
وَيَتَّبِعْ غَيْرَ سَب۪يلِ الْمُؤْمِن۪ينَ نُوَلِّه۪ مَا تَوَلّٰى وَنُصْلِه۪
جَهَنَّمَۜ وَسَٓاءَتْ مَص۪يرًا ﴿١١٥﴾ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَغْفِرُ اَنْ يُشْرَكَ بِه۪
وَيَغْفِرُ مَا دُونَ ذٰلِكَ لِمَنْ يَشَٓاءُۜ وَمَنْ يُشْرِكْ بِاللّٰهِ فَقَدْ
ضَلَّ ضَلَالًا بَع۪يدًا ﴿١١٦﴾ اِنْ يَدْعُونَ مِنْ دُونِه۪ٓ اِلَّٓا اِنَاثًاۚ
وَاِنْ يَدْعُونَ اِلَّا شَيْطَانًا مَر۪يدًاۙ ﴿١١٧﴾ لَعَنَهُ اللّٰهُۢ وَقَالَ
لَاَتَّخِذَنَّ مِنْ عِبَادِكَ نَص۪يبًا مَفْرُوضًاۙ ﴿١١٨﴾ وَلَاُضِلَّنَّهُمْ
وَلَاُمَنِّيَنَّهُمْ وَلَاٰمُرَنَّهُمْ فَلَيُبَتِّكُنَّ اٰذَانَ الْاَنْعَامِ
وَلَاٰمُرَنَّهُمْ فَلَيُغَيِّرُنَّ خَلْقَ اللّٰهِۜ وَمَنْ يَتَّخِذِ
الشَّيْطَانَ وَلِيًّا مِنْ دُونِ اللّٰهِ فَقَدْ خَسِرَ خُسْرَانًا مُب۪ينًاۜ ﴿١١٩﴾
يَعِدُهُمْ وَيُمَنّ۪يهِمْۜ وَمَا يَعِدُهُمُ الشَّيْطَانُ اِلَّا غُرُورًا ﴿١٢٠﴾
اُو۬لٰٓئِكَ مَأْوٰيهُمْ جَهَنَّمُ وَلَا يَجِدُونَ عَنْهَا مَح۪يصًا ﴿١٢١﴾

**114.** Ew ên teşwîqa sedeqeyê an qencîyê an jî lihevanîna di navbera însanan dikin ne tê de, di pirên pistepistên wan ên bi dizî de xêr tune. Kî jî vêya, (karê teşwîqa qencîyê) ji bo razîbûna Allah bike, em ê ecirekî mezin bidin wî.

**115.** Kî jî piştî ku hîdayet jê re eşkere bibe û ew ji pêxember re muxalefetê bike û ji xeynî rêya mumînan li rêyeke din bigere em wî (bi xemilandina rêya batil) li ser wê rêyê dihêlin û wî dixin cehennemê. Ew der çi cihlêvegerekî xerab e!

**116.** Bêguman Allah tu carî şirîkatîya ku jê re bê kirin efû nake. Lê tiştên ji xeynî vê (şirkê), ji bo kî bixwaze efû dike. Kî jî ji Allah re şirîk çêbike ew ketîye nava xerifîyeke dûr (ku vegera jê pir zor e).

(Ji bo îzah û cureyên şirkê û ji bo aqubeta muşrîkan bnr: 4/Nîsa, 48.)

**117.** Ew (muşrîk), dev ji Allah berdane û ji hinek pûtên ku bi navên mê binavkirine re dûa (îbadet) dikin. (Bi rastî) ew ji wî şeytanê asî pê ve ji kesî re dûa nakin.



(Ew muşrîkên heyînên xistibûn navbera xwe û Allah (ac) û ji wan re dûa dikirin ji van tiştan muteşekkîl bûn:
-Hin kesên qenc û salih ku di demên borî de li heyatê bûn, piştî mirina wan peykerên wan çêdikirin û perestîyê li wan peykeran dikirin.
-Meqberên ku kirine zîyaretgah.
-Hin lat û kevirên ku pêbawerîya wan bi xêr û bereket dayîna wan lat û keviran hebû.
-Hin dara ji bo serkeftin bide wan an ji bo miradê dilê wan bibe dikirin Darê Miradê.
Evana ji bo ku pirên wan bi navdêra mê binav bûne (navê wan pûtan) di ayetê de jî wisan derbas bûye. Dûa kirina wan a ji şeytan re jî bi vê awayê hatîye îzah kirin: Ibn Abbas (re) wiha qotîye: “Di nava her pûtêkî de şeytanek/cinek heye. Xwe nîşanî parêzvanên/bekçîyên pûtan didin û bi wan re diaxivin.” Îzaheke wê ya din jî ev e: “Ew ê ku emrê perestîya pûtan dike û vê amelê ji wan re xemilandî nîşan dide şeytan e. Her wiha ew (muşrîk) jî îtaetî emrê wî dikin û di heqîqetê de perestîyê/îbadetê jê re dikin.” (Bnr. 34/Sebe’ 40-41))

**118.** Allah lanet li wî (şeytanê) bike/kiriye. Got: “(Qesem bibe ku) ez ê ji evdên te parekî diyarkirî bistînim.”

**119.** “Ez ê wan bixerifînim û di nava wasewasên (pûç) de wan egle/eware bikim û ez ê jêkirina guhê dewaran û guherandina tiştê (fitreta) ku Allah xuliqandîye li wan emir bikim.” Kî dev ji Allah berde û wî şeytanê asî ji xwe re bike dost, bêguman ew ketîye nava zîyaneke eşkere.

**120.** Ji wan re weadan dike û wan di nav gumreşîyên (pûç û betal) de digerîne. Weada şeytan ya ku ji wan re dike, ji xapandinê pê ve ne tiştekî din e.

**121.** Sitargeha wan/hêwirgeha wan cehennem e. Ji wê derê cihê revê nabînin.

وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ سَنُدْخِلُهُمْ جَنَّاتٍ
تَجْر۪ي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِد۪ينَ ف۪يهَٓا اَبَدًاۜ وَعْدَ اللّٰهِ
حَقًّاۜ وَمَنْ اَصْدَقُ مِنَ اللّٰهِ ق۪يلًا ﴿١٢٢﴾ لَيْسَ بِاَمَانِيِّكُمْ
وَلَٓا اَمَانِيِّ اَهْلِ الْكِتَابِۜ مَنْ يَعْمَلْ سُٓوءًا يُجْزَ بِه۪ۙ
وَلَا يَجِدْ لَهُ مِنْ دُونِ اللّٰهِ وَلِيًّا وَلَا نَص۪يرًا ﴿١٢٣﴾ وَمَنْ
يَعْمَلْ مِنَ الصَّالِحَاتِ مِنْ ذَكَرٍ اَوْ اُنْثٰى وَهُوَ مُؤْمِنٌ
فَاُو۬لٰٓئِكَ يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ وَلَا يُظْلَمُونَ نَق۪يرًا ﴿١٢٤﴾
وَمَنْ اَحْسَنُ د۪ينًا مِمَّنْ اَسْلَمَ وَجْهَهُ لِلّٰهِ وَهُوَ مُحْسِنٌ وَاتَّبَعَ
مِلَّةَ اِبْرٰه۪يمَ حَن۪يفًاۜ وَاتَّخَذَ اللّٰهُ اِبْرٰه۪يمَ خَل۪يلًا ﴿١٢٥﴾ وَلِلّٰهِ
مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِۜ وَكَانَ اللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ
مُح۪يطًا ﴿١٢٦﴾ وَيَسْتَفْتُونَكَ فِي النِّسَٓاءِۜ قُلِ اللّٰهُ يُفْت۪يكُمْ
ف۪يهِنَّۙ وَمَا يُتْلٰى عَلَيْكُمْ فِي الْكِتَابِ ف۪ي يَتَامَى النِّسَٓاءِ الّٰت۪ي
لَا تُؤْتُونَهُنَّ مَا كُتِبَ لَهُنَّ وَتَرْغَبُونَ اَنْ تَنْكِحُوهُنَّ
وَالْمُسْتَضْعَف۪ينَ مِنَ الْوِلْدَانِۙ وَاَنْ تَقُومُوا لِلْيَتَامٰى
بِالْقِسْطِۜ وَمَا تَفْعَلُوا مِنْ خَيْرٍ فَاِنَّ اللّٰهَ كَانَ بِه۪ عَل۪يمًا ﴿١٢٧﴾

**122.** Em ê wan ên îmân anîne û amelên salih kirine têxin cennetên ku di binê wan de çem diherikin û wê di wir de ebedî bimînin. Weada Allah heq e. Ka kî ji Allah rastgotir e.

**123.** (Kî wê biçe cennetê an jî cehennemê) ne bi hêvîyên/bi xwezîyên we û ne jî bi yên Ehlê Kitêb çêdibe. Kî xerabîyekî bike bi wî tê cezakirin. Û ew ji bo xwe ji Allah pê ve ne dosteki û ne jî alîkarekî dibîne.

**124.** Çi mêr be çi jin, kî wek mumîn amelên salih bike, ha evana dê bikevin cennetê û bi qasî muyekî jî neheqî li wan nayê kirin.

**125.** Ma ji wî kesê wek muhsîn/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dike û rûyê xwe teslîmî Allah dike û daye pey milletê Îbrahîmê henîf qenctir xwedî dîn, kî heye? Lewre Allah, Îbrahîm ji xwe re kiribû dost.

(Ji bo Milletê Îbrahîm bnr. 60/Mûmtehîne, 4.)

**126.** Li erd û esmanan çi hebin aîdê Allah in. Allah (yê ku her tiştî hawîrdor zeft kiriye) Muhît e.

**127.** Ew, der heqê jinan de ji te fitûyê dixwazin. Bibêje: "Allah ji we re der heqê wan de fitûyê dide." Der heqê tiştên ji wan keçên sêwî re (di Kitêbê de) hatine nivîsandin ku we nedaye wan û (ligel vê) hûn dixwazin bi wan re bizewicin û der heqê zarokên aciz û sêwî de, ji bo ku edaletê li wan bikin, di Kitêba ku ji we re tê xwendin (di ayetan) de hene (ma ji we re ne bes in?) Hûn çi xêrê bikin Allah muheqeq pê dizane.

(Ji bo ayetên der heqê sêwîyan de tên xwendin bnr. 4/Nîsa, 1-5.)

وَاِنِ امْرَاَةٌ خَافَتْ مِنْ بَعْلِهَا نُشُوزًا اَوْ اِعْرَاضًا
فَلَا جُنَاحَ عَلَيْهِمَٓا اَنْ يُصْلِحَا بَيْنَهُمَا صُلْحًاۜ وَالصُّلْحُ خَيْرٌۜ
وَاُحْضِرَتِ الْاَنْفُسُ الشُّحَّۜ وَاِنْ تُحْسِنُوا وَتَتَّقُوا فَاِنَّ اللّٰهَ
كَانَ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرًا ﴿١٢٨﴾ وَلَنْ تَسْتَطِيعُٓوا اَنْ تَعْدِلُوا
بَيْنَ النِّسَٓاءِ وَلَوْ حَرَصْتُمْ فَلَا تَمِيلُوا كُلَّ الْمَيْلِ
فَتَذَرُوهَا كَالْمُعَلَّقَةِۜ وَاِنْ تُصْلِحُوا وَتَتَّقُوا فَاِنَّ اللّٰهَ كَانَ
غَفُورًا رَحِيمًا ﴿١٢٩﴾ وَاِنْ يَتَفَرَّقَا يُغْنِ اللّٰهُ كُلًّا مِنْ سَعَتِهِۜ
وَكَانَ اللّٰهُ وَاسِعًا حَكِيمًا ﴿١٣٠﴾ وَلِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ
وَمَا فِي الْاَرْضِۜ وَلَقَدْ وَصَّيْنَا الَّذِينَ اُوتُوا الْكِتَابَ
مِنْ قَبْلِكُمْ وَاِيَّاكُمْ اَنِ اتَّقُوا اللّٰهَۜ وَاِنْ تَكْفُرُوا فَاِنَّ لِلّٰهِ
مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِۜ وَكَانَ اللّٰهُ غَنِيًّا حَمِيدًا ﴿١٣١﴾
وَلِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِۜ وَكَفٰى بِاللّٰهِ وَكِيلًا ﴿١٣٢﴾
اِنْ يَشَاْ يُذْهِبْكُمْ اَيُّهَا النَّاسُ وَيَاْتِ بِاٰخَرِينَۜ وَكَانَ اللّٰهُ
عَلٰى ذٰلِكَ قَدِيرًا ﴿١٣٣﴾ مَنْ كَانَ يُرِيدُ ثَوَابَ الدُّنْيَا فَعِنْدَ
اللّٰهِ ثَوَابُ الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِۜ وَكَانَ اللّٰهُ سَمِيعًا بَصِيرًا ﴿١٣٤﴾

**128.** Eger jinek ji serkêşîya mêrê xwe an jî ji rûvegerandina (ji dûrketina wê) bi tirs be ji wan herduyan re tu guneh tune ku di navbera xwe de sulhekê bikin. Sulh (ji vebijêrkên zewaca bi pirsgirêk an jî ji berdan û ji serkêşîyê) herî bi xêrtir e. (Ligel vê yekê) di nefsan de çavnebarî û hesûdî dike. Eger hûn (qencîyê) li hevdu bikin û hûn xwe (heqên xwe yên berhemberê hevdu de) xwe ji Allah biparêzin, bêguman Allah ji karûkirinên we agahdar e.

**129.** Hûn çi qas bixwazin jî di navbera jinan de (di mijara hezkirinê de) nikarin edaletê pêk bînin. (Teqez hûn ê zêdetir hez yekê ji wan bikin.) Nexwe bi temamî meyla xwe nedin yekê û ya din jî wek girêdayî be (di navbera weke ku ne bi mêr be û ne jî berdayî be) nehêlin. Eger hûn navbera wan çêbikin û (ji Allah) bitirsin û xwe biparêzin Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqûbeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**130.** Eger (mêr û jin) hev berdin, Allah ji firehîya xwe wê herduyan jî dewlemend bike. Allah (ew ê bi lutf û îhsana xwe hemû heyînan dorpêç dike) Wasî û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**131.** Çi tiştên li erd û esmanan hene hemû aîdê Allah in. Bêguman me li we û li yên ku di berîya we de Kitêb ji wan hatine re şîret kir ku hûn ji Allah bitirsin û xwe biparêzin. Eger hûn înkar bikin (bizanibin ku) hemû tiştên li erd û esmanan aîdê Allah in. Allah, (ew ê her tişt muhtacê wî ye lê ew ne hewcedarê tu kesî) Xenîy û (yê ku herî zêde ji hemd û pesinandinê re layiq) Hamîd e.

**132.** Li erd û esmanan çi hebin bitemamî aîdê Allah in. Ji wekîlîyê re Allah bes e.

**133.** Eger (Allah) daxwaz bike -Gelî însanan!- dê we ji holê rake û hinekên din bîne şûna we. Allah, ji kirina vê re muqtedîr e.

**134.** Kî xêr û xelata dinyayê dixwaze, bêguman xêr û xelata dinya û axîretê li cem Allah e. Allah, (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e.

**135.** Gelî ew ên îmân anîne! Di aleyha we û dê û bavê we û eqrebayên we de be jî edaletê bê kêmasî pêk bînin û ji bo Allah şahidîya (bi edalet) bikin. (Ew ê hûn ji bo wan şahidî dikin) dewlemend bin an jî feqîr bin (ne li gorî zengînî û feqîrîyê binirxînin) Allah nêziktirê her duyan e. Nedin pey hewayên xwe û bi edaletîyê nekin. Eger hûn gotinê li ser zimanê xwe bigilgilînin an jî (ji edaletê) rû vegerînin bêguman Allah, li ser amelên we (ji tiştên ku hûn dikin agahdar) Xabîr e.

**136.** Gelî ew ên îmân anîne! Bi Allah û bi pêxemberê wî û bi Kitêba ji pêxemberê xwe re nazil kiriye û bi Kitêba ku berê de nazil kiriye re îmân bînin. Kî jî înkara Allah û melâiketên wî û Kitêbên wî û pêxemberên wî û roja axîretê bike, bêguman ew di nava xerîfîyeke kur (ku vegera wî ya bi heqê ve pir zor) de ye.

(Hevoka "Gelî ew ên îmân anîne! ...îman bînin." delaletê wê tiştê dike ku kesên mumîn li ser îmanê sebat bikin û ev mijara muhîm herûdaîm di rojeva wan de be. Allah (ac) ji mumînan daxwaza îmaneke wisan dike ku ew daîma zindî ye û xwedîyê xwe berhêlî teqwayê dike û bi delîlên nû re ew îmân roj bi roj hê zêdetir zexim dibe. Ev meqseda ha jî enceq bi vê tiştê hasil bibe: Xwendin û tefekkûra ayetên kewnî yên ku Allah (ac) di kaînatê de xuliqandîye û ji ezameta Allah re dibin delîlên eşkere. Ji xeynî vê xwendin û tefekkûra ayetên Qur'ana Kerîm ku ew ayet rûh û aqlê insan têr û tetmîn dike.)

**137.** Bêguman ew ên ku îmân anîn û piştre bûne kafir, paşê dîsa îmân anîn û dawî de dîsa bûne kafir û di kufra xwe de zêde pê de çûne, Allah wan mexfîret nake û rêya rast jî nîşanî wan nade.

(Kesên di vê ayetê de behsa wan dibe der heqê wan de nirxandineke wiha hatîye kirin ku; ewana munafiqên ku di navbera îmân û kufrê de herûdaîm di rewşa çûnehatê de ne. Ev, sinca/karaktera wan munafiqan e. Ew çiqas ji kufrê derdikevin û dikevin îmanê an jî ji îmanê derdikevin û noqî kufrê dibin, herî zêdetir ji heqqê dûr dikevin û di kufrê de pêş ve diçin.

Hin mufessîr jî vê ayetê wiha rave dikin: Kesên bûne mijara vê ayetê Cihû ne. Cihûyan îmân bi Mûsa (as) anîbûn. Piştre perestîya golikê kirin û bûn ji kafiran. Paşê tobe kirin û carekî din îmân anîn. Dema ku Îsa (as) wek pêxember hat, pêxemberîya wî înkar kirin û carekî din noqî kufrê bûn. Di dawî de li dij Rasûlullah de (ass) neyartîyeke dijwar kirin û bi vê awayê di kufra xwe de zêde pêş de çûn.)

**138.** Tu mizgîna ezabekî ji bo wan biêş û jan bide munafiqan!

يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا كُونُوا قَوَّامِينَ بِالْقِسْطِ شُهَدَٓاءَ لِلّٰهِ
وَلَوْ عَلٰٓى اَنْفُسِكُمْ اَوِ الْوَالِدَيْنِ وَالْاَقْرَبِينَۚ اِنْ يَكُنْ غَنِيًّا
اَوْ فَقِيرًا فَاللّٰهُ اَوْلٰى بِهِمَا فَلَا تَتَّبِعُوا الْهَوٰٓى اَنْ تَعْدِلُواۚ
وَاِنْ تَلْوُٓا اَوْ تُعْرِضُوا فَاِنَّ اللّٰهَ كَانَ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرًا ﴿١٣٥﴾ يَٓا اَيُّهَا
الَّذِينَ اٰمَنُٓوا اٰمِنُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِهِ وَالْكِتَابِ الَّذِي نَزَّلَ
عَلٰى رَسُولِهِ وَالْكِتَابِ الَّذِٓي اَنْزَلَ مِنْ قَبْلُۜ وَمَنْ يَكْفُرْ
بِاللّٰهِ وَمَلٰٓئِكَتِهِ وَكُتُبِهِ وَرُسُلِهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ فَقَدْ ضَلَّ ضَلَالًا
بَعِيدًا ﴿١٣٦﴾ اِنَّ الَّذِينَ اٰمَنُوا ثُمَّ كَفَرُوا ثُمَّ اٰمَنُوا ثُمَّ كَفَرُوا
ثُمَّ ازْدَادُوا كُفْرًا لَمْ يَكُنِ اللّٰهُ لِيَغْفِرَ لَهُمْ وَلَا لِيَهْدِيَهُمْ
سَبِيلًاۜ ﴿١٣٧﴾ بَشِّرِ الْمُنَافِقِينَ بِاَنَّ لَهُمْ عَذَابًا اَلِيمًاۙ ﴿١٣٨﴾ اَلَّذِينَ
يَتَّخِذُونَ الْكَافِرِينَ اَوْلِيَٓاءَ مِنْ دُونِ الْمُؤْمِنِينَۜ اَيَبْتَغُونَ
عِنْدَهُمُ الْعِزَّةَ فَاِنَّ الْعِزَّةَ لِلّٰهِ جَمِيعًاۜ ﴿١٣٩﴾ وَقَدْ نَزَّلَ عَلَيْكُمْ
فِي الْكِتَابِ اَنْ اِذَا سَمِعْتُمْ اٰيَاتِ اللّٰهِ يُكْفَرُ بِهَا وَيُسْتَهْزَاُ بِهَا
فَلَا تَقْعُدُوا مَعَهُمْ حَتّٰى يَخُوضُوا فِي حَدِيثٍ غَيْرِهِٓۗ اِنَّكُمْ اِذًا مِثْلُهُمْۜ
اِنَّ اللّٰهَ جَامِعُ الْمُنَافِقِينَ وَالْكَافِرِينَ فِي جَهَنَّمَ جَمِيعًاۙ ﴿١٤٠﴾

**139.** Ew in ku, dev ji mumînan berdidin û kafiran ji xwe re dikin dost. Ma ew li cem wan li îzzet û rûmetê digerin? Bêguman îzzet û rûmet bitemamî aîdê Allah e.

(Der heqê hukmê dostgirtina kafiran de bnr. 5/Mâîde, 51)

**140.** Bêguman (Allah) di Kitêbê de ji we re (vê hukmê) daxistibû: "Dema we bihîst ku ayetên Allah tên înkarkirin û tinaz bi wan tên kirin heta ew dest bi axaftina mijareke din nekin bi wan re (di heman cîvatî de) rûnenin. (Eger hûn wê mijarê red nekin an wê cîvatê terk nekin) hûn ê jî bibin (ji kafir/ji muşrîk ên) weke wan." Bêguman Allah ew e ku, wê temamê kafir û munafiqan di cehennemê de li hev kom bike.

(Divê ku mirov pir baldarê wan kesên ji xwe re kiriye heval û civaka derdora xwe bibe. Di wê dorhêla ku em bi wan însanan re parve dikin divê em pir bi dîqat bin da ku axaftinên wan ên bi naveroka kufr û fisqê hebin di heman demê de divê ku wê dorhêlê biterikînin. Eger bê îtîraz û bê teshîh û rastandin di wê dorhêlê de bê mayîn ew kes jî li îndallah/li cem Allah dibin weke wan (fasiq û mucrîman). Welew ku ew gotinên wan ên kufr û fisqê dubare/tekrar nekin jî di encamê de rewşa wan ev e. (Bnr. 6/En'âm, 68; 9/Tewbe, 65-66))

اَلَّذ۪ينَ يَتَرَبَّصُونَ بِكُمْۚ فَاِنْ كَانَ لَكُمْ فَتْحٌ مِنَ اللّٰهِ
قَالُٓوا اَلَمْ نَكُنْ مَعَكُمْۘ وَاِنْ كَانَ لِلْكَافِر۪ينَ نَص۪يبٌۙ
قَالُٓوا اَلَمْ نَسْتَحْوِذْ عَلَيْكُمْ وَنَمْنَعْكُمْ مِنَ الْمُؤْمِن۪ينَۜ فَاللّٰهُ
يَحْكُمُ بَيْنَكُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ وَلَنْ يَجْعَلَ اللّٰهُ لِلْكَافِر۪ينَ
عَلَى الْمُؤْمِن۪ينَ سَب۪يلًاۚ ﴿١٤١﴾ اِنَّ الْمُنَافِق۪ينَ يُخَادِعُونَ اللّٰهَ وَهُوَ
خَادِعُهُمْۚ وَاِذَا قَامُٓوا اِلَى الصَّلٰوةِ قَامُوا كُسَالٰىۙ يُرَٓاؤُ۫نَ النَّاسَ
وَلَا يَذْكُرُونَ اللّٰهَ اِلَّا قَل۪يلًاۘ ﴿١٤٢﴾ مُذَبْذَب۪ينَ بَيْنَ ذٰلِكَۗ
لَٓا اِلٰى هٰٓؤُ۬لَٓاءِ وَلَٓا اِلٰى هٰٓؤُ۬لَٓاءِۜ وَمَنْ يُضْلِلِ اللّٰهُ فَلَنْ تَجِدَ
لَهُ سَب۪يلًا ﴿١٤٣﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَتَّخِذُوا الْكَافِر۪ينَ
اَوْلِيَٓاءَ مِنْ دُونِ الْمُؤْمِن۪ينَۜ اَتُر۪يدُونَ اَنْ تَجْعَلُوا لِلّٰهِ عَلَيْكُمْ
سُلْطَانًا مُب۪ينًا ﴿١٤٤﴾ اِنَّ الْمُنَافِق۪ينَ فِي الدَّرْكِ الْاَسْفَلِ مِنَ النَّارِۚ
وَلَنْ تَجِدَ لَهُمْ نَص۪يرًاۙ ﴿١٤٥﴾ اِلَّا الَّذ۪ينَ تَابُوا وَاَصْلَحُوا وَاعْتَصَمُوا
بِاللّٰهِ وَاَخْلَصُوا د۪ينَهُمْ لِلّٰهِ فَاُو۬لٰٓئِكَ مَعَ الْمُؤْمِن۪ينَۜ
وَسَوْفَ يُؤْتِ اللّٰهُ الْمُؤْمِن۪ينَ اَجْرًا عَظ۪يمًا ﴿١٤٦﴾ مَا يَفْعَلُ اللّٰهُ
بِعَذَابِكُمْ اِنْ شَكَرْتُمْ وَاٰمَنْتُمْۜ وَكَانَ اللّٰهُ شَاكِرًا عَل۪يمًا ﴿١٤٧﴾

**141.** Ew (munafiq) çavnêrîya rewşa we dikin. Dema ji we re ji îndallah fethek (serkeftin û xenîmet) bê, wiha dibêjin: “Ma em jî ne bi we re bûn?” Lê eger serkeftin bibe nesîbê kafiran (wê demê jî ji wan re wiha) dibêjin: “Ma me piştgirîya we nekir û me hûn ji mumînan neparastin?” Allah, roja qiyametê wê di navbera we de hukmê xwe bide. Allah, li hemberî mumînan qet rêyekî nade kafiran. (Hûn jî di mijara rêveberîya li ser xwe de û di îmamtîya nimêjê de û di zewacê de rayeya welayetê nedin wan û destûr nedin wan ku di der heqê jiyana we de bibin xwedî soz û raye.)

**142.** Bêguman munafiq li gorî aqlê xwe zen dikin ku Allah dixapînin. (Lê belê bi muhlet dayînê û hetanî rastî seata ezabê bibin bi ewiqandinê/bi eglekirinê) Allah wan dixapîne. Dema radibin nimêjê bi sistî û bi dilgiranî radibin û ji însanan re rîyayê dikin û Allah pir hindik zikir dikin.

(Ji bo tesewwûra rêşaş ku muşrîkên Ehlê Kitêb der heqê Allah de dipejirînin bnr. 5/Maîde, 64)

**143.** Evana di navbera (îman û kufrê de) di dudilîyê de ne. Ne (bitemamî) ji van (mumînan) in û ne jî ji wan (kafiran) in. Allah her kî şaş bike tu ji bo wî qet rêyekî nabînî.

**144.** Gelî ew ên îmân anîne! Dev ji mumînan bernedin û kafiran ji xwe re dost negirin. Ma hûn dixwazin ku di aleyha xwe de delîlekî eşkere bidin Allah.

(Der heqê hukmê dostgirtina kafiran de bnr. 5/Mâîde, 51.)

**145.** Bêguman munafiq, di agir de di tebeqê herî jêrîn de ne. Tu ji bo wan qet alîkarekî jî nabînî.

**146.** Ew ên tobe kirine û halê xwe (xetayên xwe) sererast kirine û bi Allah ve girtine û ew ên dînê xwe (bê tevlîhevîya şirk û rîyayê) ji bo Allah xalis kirine; ha evana (ne bi munafiqan) bi mumînan re ne. Û Allah wê ecirekî mezin bide mumînan.

**147.** Eger hûn şikur bikin û îmân bînin, Allah wê çima we bide ezabê? Allah (ew ê spasîyê li evdên xwe dike û mikafata şikurdaran bi zêdehî dide) Şekûr û (zanayê her tiştî) Alîm e.

لَا يُحِبُّ اللّٰهُ الْجَهْرَ بِالسُّٓوءِ مِنَ الْقَوْلِ اِلَّا مَنْ ظُلِمَۜ وَكَانَ
اللّٰهُ سَمِيعًا عَلِيمًا ﴿١٤٨﴾ اِنْ تُبْدُوا خَيْرًا اَوْ تُخْفُوهُ اَوْ تَعْفُوا
عَنْ سُٓوءٍ فَاِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَفُوًّا قَدِيرًا ﴿١٤٩﴾ اِنَّ الَّذِينَ يَكْفُرُونَ
بِاللّٰهِ وَرُسُلِهِ وَيُرِيدُونَ اَنْ يُفَرِّقُوا بَيْنَ اللّٰهِ وَرُسُلِهِ وَيَقُولُونَ
نُؤْمِنُ بِبَعْضٍ وَنَكْفُرُ بِبَعْضٍۙ وَيُرِيدُونَ اَنْ يَتَّخِذُوا بَيْنَ
ذٰلِكَ سَبِيلًاۙ ﴿١٥٠﴾ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْكَافِرُونَ حَقًّاۚ وَاَعْتَدْنَا
لِلْكَافِرِينَ عَذَابًا مُهِينًا ﴿١٥١﴾ وَالَّذِينَ اٰمَنُوا بِاللّٰهِ وَرُسُلِهِ
وَلَمْ يُفَرِّقُوا بَيْنَ اَحَدٍ مِنْهُمْ اُو۬لٰٓئِكَ سَوْفَ يُؤْتِيهِمْ اُجُورَهُمْۜ
وَكَانَ اللّٰهُ غَفُورًا رَحِيمًا ﴿١٥٢﴾ يَسْـَٔلُكَ اَهْلُ الْكِتَابِ
اَنْ تُنَزِّلَ عَلَيْهِمْ كِتَابًا مِنَ السَّمَٓاءِ فَقَدْ سَاَلُوا مُوسٰٓى اَكْبَرَ
مِنْ ذٰلِكَ فَقَالُٓوا اَرِنَا اللّٰهَ جَهْرَةً فَاَخَذَتْهُمُ الصَّاعِقَةُ بِظُلْمِهِمْۚ
ثُمَّ اتَّخَذُوا الْعِجْلَ مِنْ بَعْدِ مَا جَٓاءَتْهُمُ الْبَيِّنَاتُ فَعَفَوْنَا
عَنْ ذٰلِكَۚ وَاٰتَيْنَا مُوسٰى سُلْطَانًا مُبِينًا ﴿١٥٣﴾ وَرَفَعْنَا فَوْقَهُمُ
الطُّورَ بِمِيثَاقِهِمْ وَقُلْنَا لَهُمُ ادْخُلُوا الْبَابَ سُجَّدًا وَقُلْنَا
لَهُمْ لَا تَعْدُوا فِي السَّبْتِ وَاَخَذْنَا مِنْهُمْ مِيثَاقًا غَلِيظًا ﴿١٥٤﴾




**148.** Allah ji gotinên xerab ên eşkere hez nake. Lê ew ên zilim lê hatîye kirin ne tê de. Allah (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

(Kesê ku zilim lê hatîye kirin sê heqqê wî yên meşrû hene:

1- Misil bi misil hemberîdana wê (xerabîyê) û sitendina heqqê xwe. (Bnr.2/Baqara, 194)

2- Efûkirina wê zilmê. (Bnr.16/Nahl, 126; 42/Şûrâ, 40)

3- Qencîya di muqabilê wê xerabîyê de. (Bnr.41/Fussîlet, 34-35))

**149.** Hûn xêrekî eşkere bikin an wê veşêrin an jî xerabîyekê efû bikin, bêguman Allah (yê ku gunehan efû dike) Afûw û (yê ku hêza wî digihîje her tiştî û xwedî qudreta mutleq) Qadîr e.

**150.** Bêguman ew ên Allah û pêxemberên wî înkar dikin û dixwazin cudahîyê têxin navbera Allah û pêxemberên wî û dibêjin: “Em bi hinekan îmân tînin û hinekan jî înkar dikin” û ew dixwazin ku di navbera wan (îslâm û kufrê) de rêyeke din bigirin (hene);

**151.** Evana, kafirên heqîqî bixwe ne. Me ji bo kafiran ezabekî riswaker amade kiriye.

**152.** Ew ên bi Allah û bi Rasûlên wî îmân anîne û cudahî nexistine navbera wan; wê (Allah) ecirên wan bide wan. Allah (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**153.** (Ew ên) Ehlê Kitêb ji te dixwazin ku tu ji asîmanan Kitêbekê bi ser wan ve daxînî. (Ji ber vê daxwaza wan heyirî nemîne!) Bêguman ji Mûsa jî ya ji vêya mezintir xwestibûn. Gotin: “Allah bi eşkerehî (bi awayê ku em bi çavê tazî bibînin) nîşanî me bide.” Bi vî awayî ji ber zilimkarîya wan, birûsk li wan ketibû. Axir piştî ku delîlên eşkere ji wan re hatin, golik ji xwe re (wek îlâh) girtin. Me dîsa ew (gunehên wan jî) mexfîret kir. Û me delîleke eşkere da Mûsa.

**154.** Me çiyayê Tûr (ji bo ku soz dabûn Allah), di ser serê wan de rakir. Me got: “Di derî de secde bikin û bikevinê.” Me ji wan re got: “Roja şemîyê/roja sebtê qedexeya (masîgirtinê) binpê nekin.” Û me sozeke zexm ji wan girtibû.

فَبِمَا نَقْضِهِمْ مِيثَاقَهُمْ وَكُفْرِهِمْ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَقَتْلِهِمُ الْاَنْبِيَٓاءَ بِغَيْرِ
حَقٍّ وَقَوْلِهِمْ قُلُوبُنَا غُلْفٌۜ بَلْ طَبَعَ اللّٰهُ عَلَيْهَا بِكُفْرِهِمْ
فَلَا يُؤْمِنُونَ اِلَّا قَليلاًۖ ﴿١٥٥﴾ وَبِكُفْرِهِمْ وَقَوْلِهِمْ عَلٰى مَرْيَمَ بُهْتَانًا
عَظِيمًاۙ ﴿١٥٦﴾ وَقَوْلِهِمْ اِنَّا قَتَلْنَا الْمَسِيحَ عِيسَى ابْنَ مَرْيَمَ
رَسُولَ اللّٰهِۚ وَمَا قَتَلُوهُ وَمَا صَلَبُوهُ وَلٰكِنْ شُبِّهَ لَهُمْۜ وَاِنَّ الَّذِينَ
اخْتَلَفُوا فِيهِ لَفِي شَكٍّ مِنْهُۜ مَا لَهُمْ بِهِ مِنْ عِلْمٍ اِلَّا اتِّبَاعَ الظَّنِّۚ
وَمَا قَتَلُوهُ يَقِينًاۙ ﴿١٥٧﴾ بَلْ رَفَعَهُ اللّٰهُ اِلَيْهِۜ وَكَانَ اللّٰهُ عَزِيزًا حَكِيمًا ﴿١٥٨﴾
وَاِنْ مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ اِلَّا لَيُؤْمِنَنَّ بِهِ قَبْلَ مَوْتِهِۚ وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِ
يَكُونُ عَلَيْهِمْ شَهِيدًاۚ ﴿١٥٩﴾ فَبِظُلْمٍ مِنَ الَّذِينَ هَادُوا حَرَّمْنَا
عَلَيْهِمْ طَيِّبَاتٍ اُحِلَّتْ لَهُمْ وَبِصَدِّهِمْ عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ كَثِيرًاۙ ﴿١٦٠﴾
وَاَخْذِهِمُ الرِّبٰوا وَقَدْ نُهُوا عَنْهُ وَاَكْلِهِمْ اَمْوَالَ النَّاسِ بِالْبَاطِلِۜ
وَاَعْتَدْنَا لِلْكَافِرِينَ مِنْهُمْ عَذَابًا اَلِيمًا ﴿١٦١﴾ لٰكِنِ الرَّاسِخُونَ
فِي الْعِلْمِ مِنْهُمْ وَالْمُؤْمِنُونَ يُؤْمِنُونَ بِمَٓا اُنْزِلَ اِلَيْكَ وَمَٓا اُنْزِلَ
مِنْ قَبْلِكَ وَالْمُق۪يمِينَ الصَّلٰوةَ وَالْمُؤْتُونَ الزَّكٰوةَ وَالْمُؤْمِنُونَ
بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِۜ اُو۬لٰٓئِكَ سَنُؤْت۪يهِمْ اَجْرًا عَظِيمًا ﴿١٦٢﴾

**155.** Ji ber ku soza xwe xera kirin û li dij ayetên Allah bûn kafir û bi neheqî pêxemberên xwe kuştibûn û (ji sedema vê gotina xwe ku gotin:) “Qelbên me (li dij heq û heqîqetê) nuxamtî ye!” (me wan ceza kiribû). (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, ji ber kufra wan Allah qelbê wan mohr kiriye. (Ji ber vê) ji hindikî wan pê ve ew îmân naynin.

**156.** Dîsa ji ber kufra wan û bi sebebê bêbextîya li Meryem kirine (jî me wan ceza kiribû).

**157.** Bi sedema ku digotin “Me pêxemberê Allah, Îsa Mesîhê kurê Meryem kuştîye” (me ji bo vê jî wan ceza kiribû). (Hal ev e ku) wan ew ne kuştîye û ne jî wan ew li çarmixê daye, (ew ê ku daleqandin ji wan re weke Îsa) hate şibandin. Bi rastî ew ên (der heqê Îsa de) nîqaş dikin, ji ber wê di gumanê de ne. Ji zenne pê ve ne xwedî agahîyekî ne. Qethîyen ew nekuştine.

**158.** (Ne li gor zenna wan e!) Bilakîs, Allah ew (Îsa) hildaye cem xwe. Allah (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**159.** Hemû kesên Ehlê Kitêb, berîya mirina xwe muheqeq wê bi wî îmân bînin. (Îsa jî) wê roja qiyametê di aleyha wan de şahidîyê bike.

**160.** Bi sedema zilma ku Cihûyan kiribû û bi sedema ku wan pir kes ji rêya Allah vegerandibûn, hin nîmetên paqij û (ên ku berê de) ji wan re helal bûn, me ji wan re heram kirin.

**161.** Digel ku nehîya wan jê hatibû kirin jî (wan) ribayê û malên însanan bi rêyên batil dixwarin... Me ji bo kafirên ji wan re ezabekî biêş û jan amade kiriye.

**162.** Lê ji wan ên di ilmê de pêş de çûne û îmân anîne, îman bi ya ku ji te re nazil bûye û bi yên berî te nazil bûne re îmân tînin. Ew ên nimêja xwe îqame/rasterast dikin û zekâta xwe didin û bi Allah û bi roja axîretê îmân tînin... Em ê ecirekî mezin bidin wan.

اِنَّٓا اَوْحَيْنَٓا اِلَيْكَ كَمَٓا اَوْحَيْنَٓا اِلٰى نُوحٍ وَالنَّبِيِّنَ
مِنْ بَعْدِهٖۚ وَاَوْحَيْنَٓا اِلٰٓى اِبْرٰهِيمَ وَاِسْمٰعِيلَ وَاِسْحٰقَ وَيَعْقُوبَ
وَالْاَسْبَاطِ وَعِيسٰى وَاَيُّوبَ وَيُونُسَ وَهٰرُونَ وَسُلَيْمٰنَۚ
وَاٰتَيْنَا دَاوُدَ زَبُورًاۚ ﴿١٦٣﴾ وَرُسُلًا قَدْ قَصَصْنَاهُمْ عَلَيْكَ مِنْ قَبْلُ
وَرُسُلًا لَمْ نَقْصُصْهُمْ عَلَيْكَۜ وَكَلَّمَ اللّٰهُ مُوسٰى تَكْلِيمًاۚ ﴿١٦٤﴾
رُسُلًا مُبَشِّرِينَ وَمُنْذِرِينَ لِئَلَّا يَكُونَ لِلنَّاسِ عَلَى اللّٰهِ
حُجَّةٌ بَعْدَ الرُّسُلِۜ وَكَانَ اللّٰهُ عَزِيزًا حَكِيمًا ﴿١٦٥﴾ لٰكِنِ اللّٰهُ
يَشْهَدُ بِمَٓا اَنْزَلَ اِلَيْكَ اَنْزَلَهُ بِعِلْمِهٖۚ وَالْمَلٰٓئِكَةُ يَشْهَدُونَۜ
وَكَفٰى بِاللّٰهِ شَهِيدًا ﴿١٦٦﴾ اِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا وَصَدُّوا
عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ قَدْ ضَلُّوا ضَلَالًا بَعِيدًا ﴿١٦٧﴾ اِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا
وَظَلَمُوا لَمْ يَكُنِ اللّٰهُ لِيَغْفِرَ لَهُمْ وَلَا لِيَهْدِيَهُمْ طَرِيقًاۙ ﴿١٦٨﴾
اِلَّا طَرِيقَ جَهَنَّمَ خَالِدِينَ فِيهَٓا اَبَدًاۜ وَكَانَ ذٰلِكَ
عَلَى اللّٰهِ يَسِيرًا ﴿١٦٩﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ قَدْ جَٓاءَكُمُ الرَّسُولُ
بِالْحَقِّ مِنْ رَبِّكُمْ فَاٰمِنُوا خَيْرًا لَكُمْۜ وَاِنْ تَكْفُرُوا فَاِنَّ لِلّٰهِ
مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَكَانَ اللّٰهُ عَلِيمًا حَكِيمًا ﴿١٧٠﴾

**163.** Bêguman çawa me ji Nûh û pêxemberên di pey wî (hatine) re wehîy kiriye me ji te re jî wehîy kiriye. Me ji Îbrahîm re û ji Îsmaîl re û ji Îshaq re û ji Yaqûb re û ji nevîyên wî re û ji Îsâ re û ji Eyyûb re û ji Yûnus re û ji Hârûn re û ji Suleyman re jî wehîy kiribû. Û me Zebûr jî dabû Dawûd.

**164.** Me hin pêxemberên din ku me behsa wan ji te re kiribû û hin pêxemberên me behsa wan ji te re nekiribû re jî (wehîy kir). Allah bi Mûsa re jî (bi awayekî qethî) peyivî/axivî.

**165.** Me bi hişyarkerî û mizgînvanî Rasûlan şand. Heta ku bila di piştî hatina wan pêxemberan de li hemberî Allah (ku bibêjin "Me seh nekiribû" an jî "Em nizanin" wek hincet) tu delîlekî wan nemîne. Allah (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**166.** (Ew ên Cihû dibêjin: "Ji pêxembertîya te re tu agahîya me tune ku em şahidî bidin.) Lê belê Allah bi (Qur'an) a ji te re nazil kiriye şahidî dike ku, wî ev bi îlmê xwe nazil kiriye. Melâiket jî şahidî dikin. Wek şahid Allah bes e.

**167.** Bêguman ew ên kafir û (însanan) ji rêya Allah men dikin, di nava xerifîyeke dûr (ku vegera wî ya bi heqê ve pir zor) de ne.

**168.** Bêguman Allah ne mexfîretê li kafir û zaliman dike û ne jî wan digihîne rêya rast.

**169.** (Rêya ku wan bigihîne, bitenê) rêya cehennemê ye ku wê tê de bêdawî bimînin. Û ev ji Allah re pir hêsan e.

**170.** Gelî însanan! Bêguman pêxember ji we re ji Rabbê we bi heq hatîye. Îmân (pê) bînin. (Ev) ji bo we ya herî bi xêrtir e. Eger hûn înkar bikin, bêguman li erd û esmanan çi hebe hemû aîdê Allah in. Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

هَلْ يَنْظُرُونَ اِلَّٓا اَنْ تَأْتِيَهُمُ الْمَلٰٓئِكَةُ اَوْ يَأْتِيَ رَبُّكَ اَوْ يَأْتِيَ
بَعْضُ اٰيَاتِ رَبِّكَۜ يَوْمَ يَأْتِي بَعْضُ اٰيَاتِ رَبِّكَ لَا يَنْفَعُ نَفْسًا اِيمَانُهَا
لَمْ تَكُنْ اٰمَنَتْ مِنْ قَبْلُ اَوْ كَسَبَتْ فٖٓي اِيمَانِهَا خَيْرًاۜ قُلِ انْتَظِرُٓوا
اِنَّا مُنْتَظِرُونَ ﴿١٥٨﴾ اِنَّ الَّذٖينَ فَرَّقُوا دٖينَهُمْ وَكَانُوا شِيَعًا لَسْتَ مِنْهُمْ
فٖي شَيْءٍۜ اِنَّمَٓا اَمْرُهُمْ اِلَى اللّٰهِ ثُمَّ يُنَبِّئُهُمْ بِمَا كَانُوا يَفْعَلُونَ ﴿١٥٩﴾
مَنْ جَٓاءَ بِالْحَسَنَةِ فَلَهُ عَشْرُ اَمْثَالِهَاۚ وَمَنْ جَٓاءَ بِالسَّيِّئَةِ فَلَا يُجْزٰٓى
اِلَّا مِثْلَهَا وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿١٦٠﴾ قُلْ اِنَّنٖي هَدٰينٖي رَبّٖٓي اِلٰى صِرَاطٍ
مُسْتَقٖيمٍۚ دٖينًا قِيَمًا مِلَّةَ اِبْرٰهٖيمَ حَنٖيفًاۚ وَمَا كَانَ مِنَ الْمُشْرِكٖينَ ﴿١٦١﴾
قُلْ اِنَّ صَلَاتٖي وَنُسُكٖي وَمَحْيَايَ وَمَمَاتٖي لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمٖينَۙ ﴿١٦٢﴾
لَا شَرٖيكَ لَهُۚ وَبِذٰلِكَ اُمِرْتُ وَاَنَا۬ اَوَّلُ الْمُسْلِمٖينَ ﴿١٦٣﴾ قُلْ اَغَيْرَ
اللّٰهِ اَبْغٖي رَبًّا وَهُوَ رَبُّ كُلِّ شَيْءٍۜ وَلَا تَكْسِبُ كُلُّ نَفْسٍ اِلَّا
عَلَيْهَاۚ وَلَا تَزِرُ وَازِرَةٌ وِزْرَ اُخْرٰىۚ ثُمَّ اِلٰى رَبِّكُمْ مَرْجِعُكُمْ
فَيُنَبِّئُكُمْ بِمَا كُنْتُمْ فٖيهِ تَخْتَلِفُونَ ﴿١٦٤﴾ وَهُوَ الَّذٖي جَعَلَكُمْ
خَلَٓائِفَ الْاَرْضِ وَرَفَعَ بَعْضَكُمْ فَوْقَ بَعْضٍ دَرَجَاتٍ لِيَبْلُوَكُمْ
فٖي مَٓا اٰتٰيكُمْۜ اِنَّ رَبَّكَ سَرٖيعُ الْعِقَابِۘ وَاِنَّهُ لَغَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿١٦٥﴾

**158.** Ma ew (ên ayetên Allah tekzîb dikin/diderewînin û berê însanan jê vedigerînin) qey (ji van pê ve) li hêvîya tiştekî din in ku melâiket an Rabbê te an jî hinek ayetên Rabbê te werin? Roja ku hinek ayetên Rabbê te hatin ew kesê berê de îmân neanîbe an jî bi îmana xwe xêrek bi dest nexistibe, êdî îmana wî feyde nadê. Bibêje: "(De ka) li bendê bisekinin/li hêvîyê bimînin. Bêguman em jî li hêvîyê ne/li bendê ne."

(Rasûlullah (ass) wiha ferman kiriye: "Hetanî roj ji rojhilat dernekeve qiyamet ranabe. Ji însanan hin kes dema wê rewşê dibînin di heman demê de dixwazin ku îmân bînin. Ew kesên berê de îmân neanîbin û di îmana xwe de tu xêr bi dest nexistibin (amelên salih nekiribin) îmana wan a piştî wê lehzê feyde nade wan." (Buxarî, 4635; Mûslîm, 157)

Ev ayet û hadîsê Rasûlullah (ass) bi me dide zanîn ku: Kesê îmân anîbe lê di îmananîna xwe de tu xêr bi dest nexistibe, yanê îmana xwe bi amelên salih ne dabe tesdîq kirin, îmana wî kesî qet tu feyde nade wî. Lewre îman; bawerî û amelkirina tiştên bawerî bi wan hatîye kirin e. Îmanekî bê amel wekî ku "tune" be û weke lodekî ji qebûl û tesdîqan pêkhatî be qet tu hukmê wî tune. Di dîroka îslâmê de xerabîya herî mezin ku bi îslâmê hatîye kirin ji wan yek jî ev raman e: "Îmana bê amel jî mimkûn e û hetanî îmanekî wiha bi îmana nebîyan û melâîketan û eshabîyan wekhev e."

**159.** Ew ên ku dînê xwe parçe parçe kirin û bûne firqe firqe (hene); tu têkilîya te bi wan re tune. Karê wan/îşê wan maye bi Allah. Paşê (Allah) wê wan ji kar û kirinên wan agahdar bike.

(Li ser mijara çawanîya parçekirina dîn bnr. 23/Mu'minûn, 53.)

**160.** Kî bi qencîyekê bê (hizûra Allah) ji wî re bi qasî deh qatî wê berdêl bê dayîn. Kî jî bi xerabîyekê were ew ê tenê bi qasî wê bê cezakirin. Neheqî jî li wan nayê kirin.

**161.** Bibêje: "Bêguman Rabbê min ez gihandim ser rêya rasterast. Dînê Îbrahîm, ya ripîrast/qewî û henîf. Ew ne ji muşrîkan bû."

(Ji bo Milletê Îbrahîm bnr. 60/Mumtehîne, 4.)

**162.** Bibêje: "Bêguman nimêja min û qurbana min û jiyana min û mirina min ji bo Allahê Rabbê aleman e."

**163.** "Qet tu şirîkê wî tune. Ez bi vêya hatime emirkirin û ez ji muslîmên/ew evdên ku şirkê terk kirine û bi tewhîdê berê xwe dane Allah ya pêşîn im."

(Ev ayetên hanê, tefsîr û îzaha tewhîdê û evdîtîyê û milletê Îbrahîm dikin. Kesê mumîn, sereta nimêj û qurban hemû îbadetên xwe yê bedenî û qelbî tenê bitenê ji Allah (ac) re dike. Di îbadetên wî de ji xeynî Allah (ac) ji tu heyînekî re qet tu par tune. Heyat û mirin ser de her tişt di destê Allah (ac) de ye. Qet tu heyînekî ku bi Allah (ac) re di kaînatê de teserrûfê dike an jî di vê rayeyê de ji xwe re hevpar kiribe tune. Ne bitenê îbadetên mumîn, jiyan û mirina wî jî bi tevahî ji Allah (ac) re ye. Ew, ji bo Allah (ac) dijî û ji bo Allah dimire. Qet tu meqsed û armanceke ji xeynî Allah (ac) ku ji bo wê heyata xwe bidomîne û di wê oxirê de bimire tune. Ji bo îzahata tewhîdê ya berfirehî bnr. 1/Fatîhe, 5.)

**164.** "Digel ku ew Rabbê her tiştî ye, ma dibe ku ez ji xeynî Allah li Rabbekî din bigerim?" Keda/qezenca her kesî ji wî re ye. Qet tu kesê sûcdar cirma yekî din hilnagire. Paşê vegera we bi bal Rabbê we ve ye. Û ew, ji tiştên ku hûn li ser bi hev nakin (çi heq û rast e) dê we haydar bike."

**165.** Ew ê ku we li ser rûyê erdê kiriye xelîfe ew (Allah) e. Ji bo ku we bi wan tiştên ku daye we biceribîne, ew ê ku dereceyên we hinekan li ser hinekan re girtîye (jî) ew e. Bêguman Rabbê te yê ku cezayê wî pir bi lez e/lezgîn e. Bêguman ew, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitîrîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

سُورَةُ الْأَعْرَافِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ مِائَتَانِ وَسِتُّ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
الٓمٓصٓ ﴿١﴾ كِتَابٌ اُنْزِلَ اِلَيْكَ فَلَا يَكُنْ ف۪ي صَدْرِكَ حَرَجٌ
مِنْهُ لِتُنْذِرَ بِه۪ وَذِكْرٰى لِلْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٢﴾ اِتَّبِعُوا مَٓا اُنْزِلَ اِلَيْكُمْ
مِنْ رَبِّكُمْ وَلَا تَتَّبِعُوا مِنْ دُونِه۪ٓ اَوْلِيَٓاءَۜ قَل۪يلًا مَا تَذَكَّرُونَ ﴿٣﴾
وَكَمْ مِنْ قَرْيَةٍ اَهْلَكْنَاهَا فَجَٓاءَهَا بَأْسُنَا بَيَاتًا اَوْ هُمْ قَٓائِلُونَ ﴿٤﴾
فَمَا كَانَ دَعْوٰيهُمْ اِذْ جَٓاءَهُمْ بَأْسُنَٓا اِلَّٓا اَنْ قَالُٓوا اِنَّا كُنَّا ظَالِم۪ينَ ﴿٥﴾
فَلَنَسْـَٔلَنَّ الَّذ۪ينَ اُرْسِلَ اِلَيْهِمْ وَلَنَسْـَٔلَنَّ الْمُرْسَل۪ينَۙ ﴿٦﴾ فَلَنَقُصَّنَّ
عَلَيْهِمْ بِعِلْمٍ وَمَا كُنَّا غَٓائِب۪ينَ ﴿٧﴾ وَالْوَزْنُ يَوْمَئِذٍۨ الْحَقُّۚ فَمَنْ ثَقُلَتْ
مَوَاز۪ينُهُ فَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٨﴾ وَمَنْ خَفَّتْ مَوَاز۪ينُهُ فَاُو۬لٰٓئِكَ
الَّذ۪ينَ خَسِرُٓوا اَنْفُسَهُمْ بِمَا كَانُوا بِاٰيَاتِنَا يَظْلِمُونَ ﴿٩﴾ وَلَقَدْ مَكَّنَّاكُمْ
فِي الْاَرْضِ وَجَعَلْنَا لَكُمْ ف۪يهَا مَعَايِشَۜ قَل۪يلًا مَا تَشْكُرُونَ ﴿١٠﴾
وَلَقَدْ خَلَقْنَاكُمْ ثُمَّ صَوَّرْنَاكُمْ ثُمَّ قُلْنَا لِلْمَلٰٓئِكَةِ اسْجُدُوا
لِاٰدَمَۗ فَسَجَدُٓوا اِلَّٓا اِبْل۪يسَۜ لَمْ يَكُنْ مِنَ السَّاجِد۪ينَ ﴿١١﴾

## 7. SÛREYA A'RAF

*(Sûreya A'raf, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û du sed û şeş (206) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya heftemîn e. Sedema navandina vê sûreyê wek A'raf ev e: Di ayeta 46. de behsa hin kesan dike ku ew di girekî bilind/di A'raf de sekinî ne û li ehlê cennetê û cehennemê dinêrin û wan ji sîmayên wan nas dikin û silav li ehlê cennetê dikin. Ew kes di ayeta 48. de jî ji ehlê cehennemê re dibêjin ku qûretîya wan qet tu feyde nedaye wan. Di vê sûreyê de agahî û emrên li ser aqîda tewhîdê û esasên îslamê hatîye vegotin. Ev sûre di naveroka xwe de hin qiseyên pêxemberan û qewmên berê jî vedihewîne*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Elîf, Lâm, Mîm, Sâd.

**2.** (Ev) Kitêb (Qur'an), ji bona ku tu pê însanan hişyar bikî û ji mumînan re jî bibe şîret, me ji te re nazil kiriye. (Nebe ku) ji ber wê di singa te de tengasiyek çêbibe.



**3.** Bidin pey wê ya ku ji Rabbê we ji we re daxistî ye. Ji wî pê ve nedin pey dostên/welîyên din. Hûn çi qas hindik şîretan digirin!

**4.** Gelek welat hene ku ezabê me an di xewa (nîvê) şevê de an jî danê nîvro dema îstirehatê de bi wan girt û me ew helak kirine.

**5.** Dema ezaba me ji wan re hatibû ji lavahîya ku digotin: "Bi rastî em zilimkar bûn!" pê ve dengê wan derneket.

**6.** Sond be, em ê hem ji (qewm) ên ji wan re (pêxember) hatine şandin û hem jî ji ew ên (wek pêxember) şandî ne jî bipirsin/wan bikişînin hîsabê...

**7.** Û em ê wan ji (karûkirinên) wan bi ilim agahdar bikin. Em (ji wan) ne bêxeber in.

**8.** Wê rojê wezin (a xêr û gunehan) heq e. Wezina (xêrên) kî giran bikişe, ha ew ên xelas bûne ew bixwe ne.

**9.** Wezina kî jî (di amelên salih de) sivik bikişe, ji ber ku ewana li ayetên me neheqî kirine/rûmeta pê hewce nedanê xwe bixwe xusirandine.

**10.** Sond be, me hûn li ser rûyê erdê bi cih kirin û li wê derê ji bo derfetên debarê (jiyanborandinê) da we. Hûn çi qas hindik şikir dikin!

**11.** Sond be, me hûn xuliqandin û paşê sûret da we û me ji melâîketan re got: "Ji Âdem re secde bikin." Ji xeynî iblîs hemûyan secde kirin. Ew, nebû ji secdebiran.

قَالَ مَا مَنَعَكَ اَلَّا تَسْجُدَ اِذْ اَمَرْتُكَۜ قَالَ اَنَا۬ خَيْرٌ مِنْهُۚ خَلَقْتَن۪ي مِنْ نَارٍ
وَخَلَقْتَهُ مِنْ ط۪ينٍ ﴿١٢﴾ قَالَ فَاهْبِطْ مِنْهَا فَمَا يَكُونُ لَكَ اَنْ تَتَكَبَّرَ
ف۪يهَا فَاخْرُجْ اِنَّكَ مِنَ الصَّاغِر۪ينَ ﴿١٣﴾ قَالَ اَنْظِرْن۪ٓي اِلٰى يَوْمِ يُبْعَثُونَ ﴿١٤﴾
قَالَ اِنَّكَ مِنَ الْمُنْظَر۪ينَ ﴿١٥﴾ قَالَ فَبِمَٓا اَغْوَيْتَن۪ي لَاَقْعُدَنَّ لَهُمْ
صِرَاطَكَ الْمُسْتَق۪يمَۙ ﴿١٦﴾ ثُمَّ لَاٰتِيَنَّهُمْ مِنْ بَيْنِ اَيْد۪يهِمْ وَمِنْ خَلْفِهِمْ
وَعَنْ اَيْمَانِهِمْ وَعَنْ شَمَٓائِلِهِمْۜ وَلَا تَجِدُ اَكْثَرَهُمْ شَاكِر۪ينَ ﴿١٧﴾
قَالَ اخْرُجْ مِنْهَا مَذْؤُ۫مًا مَدْحُورًاۜ لَمَنْ تَبِعَكَ مِنْهُمْ لَاَمْلَئَنَّ جَهَنَّمَ
مِنْكُمْ اَجْمَع۪ينَ ﴿١٨﴾ وَيَٓا اٰدَمُ اسْكُنْ اَنْتَ وَزَوْجُكَ الْجَنَّةَ فَكُلَا
مِنْ حَيْثُ شِئْتُمَا وَلَا تَقْرَبَا هٰذِهِ الشَّجَرَةَ فَتَكُونَا مِنَ الظَّالِم۪ينَ ﴿١٩﴾
فَوَسْوَسَ لَهُمَا الشَّيْطَانُ لِيُبْدِيَ لَهُمَا مَا وُ۫رِيَ عَنْهُمَا مِنْ سَوْاٰتِهِمَا
وَقَالَ مَا نَهٰيكُمَا رَبُّكُمَا عَنْ هٰذِهِ الشَّجَرَةِ اِلَّٓا اَنْ تَكُونَا مَلَكَيْنِ
اَوْ تَكُونَا مِنَ الْخَالِد۪ينَ ﴿٢٠﴾ وَقَاسَمَهُمَٓا اِنّ۪ي لَكُمَا لَمِنَ النَّاصِح۪ينَۙ ﴿٢١﴾
فَدَلّٰيهُمَا بِغُرُورٍۚ فَلَمَّا ذَاقَا الشَّجَرَةَ بَدَتْ لَهُمَا سَوْاٰتُهُمَا وَطَفِقَا
يَخْصِفَانِ عَلَيْهِمَا مِنْ وَرَقِ الْجَنَّةِۜ وَنَادٰيهُمَا رَبُّهُمَٓا اَلَمْ اَنْهَكُمَا
عَنْ تِلْكُمَا الشَّجَرَةِ وَاَقُلْ لَكُمَٓا اِنَّ الشَّيْطَانَ لَكُمَا عَدُوٌّ مُب۪ينٌ ﴿٢٢﴾

**12.** (Allah) got: “Digel min emrê secdekirinê li te kir, ew çi bû ku nehişt tu herî secdê?” (Îblîs) got: “Ez ji Âdem bi xêrtir im. (Lewre) te ez ji agir xuliqandim û Âdem jî ji herîyê xuliqand.”

**13.** (Allah) got: “(Hema vê gavê) ji wê derê dakeve! Ne heddê te ye ku tu li wir quretîyê bikî! (Aniha) dakeve! (Lewre) tu ji riswayan/ji sernewqan î.”

**14.** Got: “Heta roja ku (însan) ji nû de tên vejandin muhletê bide min.”

**15.** (Allah) got: “Bêguman tu ji yên muhletdayîyan î.”

**16.** Got: “Ji ber ku te ez rêwinda kirim, ez ê jî ji bona ku berê wan (însanan) bi rêşaşîyê ve bidim li ser rêya te ya rast rûnim.”

**17.** “Paşê ez ê muheqeq ji pêş wan û ji pişt wan ve û ji rastê wan û ji çepê wan ve nêzîkî wan bibim/xwe di ber wan re bikim. Tu yê pirên wan ji şikurdaran nebînî.”

**18.** (Allah) got: “Bi riswayî û qewirandî ji wê derê (ji cennetê) derkeve. Ji wan (însanan) kî bide pey te ez ê cehennemê bi we dagirim.”

**19.** “Ya Âdem! Tu û hevjîna xwe di cennetê de bi cih bibin û hûn ji ku derê dixwazin jê bixwin. Nêzî vê darê nebin. Nexwe hûn ê bibin ji zaliman.”

**20.** (Axir şeytan) ji bo ku cihê wan ên awretê ku nuxamtî bû derêxê holê, wasewas da (dilê) wan. Û got: “Rabbê we ji bo ku hûn nebin melaîket an jî hûn nebin ji wan ên ku ebedîyen dijîn, xwarina ji vê darê ji we re qedexe kiriye.”

**21.** Ji wan re sond xwar (û got): “Bi rastî ez qencîya we dixwazim/şîreta xêrê li we dikim.”

**22.** (Bi van weswese û sondan) wan xapand û (her duyan jî) xiste tora/tevna xwe. Dema ku ji wê darê tam kirin, cihê wan ên awretê ji wan re hatibû xuyakirin. Wan jî bi pelê cennetê dest bi nixumandina xwe kirin. Rabbê wan wiha gazî wan kiribû: “Ma min ev dar li we qedexe nekiribû? Min negot ku ‘Şeytan ji we re dijminekî eşkere ye?”

قَالَا رَبَّنَا ظَلَمْنَٓا اَنْفُسَنَا وَاِنْ لَمْ تَغْفِرْ لَنَا وَتَرْحَمْنَا لَنَكُونَنَّ
مِنَ الْخَاسِر۪ينَ ﴿٢٣﴾ قَالَ اهْبِطُوا بَعْضُكُمْ لِبَعْضٍ عَدُوٌّۚ
وَلَكُمْ فِي الْاَرْضِ مُسْتَقَرٌّ وَمَتَاعٌ اِلٰى ح۪ينٍ ﴿٢٤﴾ قَالَ ف۪يهَا
تَحْيَوْنَ وَف۪يهَا تَمُوتُونَ وَمِنْهَا تُخْرَجُونَ ﴿٢٥﴾ يَا بَن۪ٓي اٰدَمَ قَدْ اَنْزَلْنَا
عَلَيْكُمْ لِبَاسًا يُوَار۪ي سَوْاٰتِكُمْ وَر۪يشًاۜ وَلِبَاسُ التَّقْوٰى
ذٰلِكَ خَيْرٌۜ ذٰلِكَ مِنْ اٰيَاتِ اللّٰهِ لَعَلَّهُمْ يَذَّكَّرُونَ ﴿٢٦﴾ يَا بَن۪ٓي
اٰدَمَ لَا يَفْتِنَنَّكُمُ الشَّيْطَانُ كَمَٓا اَخْرَجَ اَبَوَيْكُمْ مِنَ الْجَنَّةِ يَنْزِعُ
عَنْهُمَا لِبَاسَهُمَا لِيُرِيَهُمَا سَوْاٰتِهِمَاۜ اِنَّهُ يَرٰيكُمْ هُوَ وَقَب۪يلُهُ
مِنْ حَيْثُ لَا تَرَوْنَهُمْۜ اِنَّا جَعَلْنَا الشَّيَاط۪ينَ اَوْلِيَٓاءَ لِلَّذ۪ينَ
لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٢٧﴾ وَاِذَا فَعَلُوا فَاحِشَةً قَالُوا وَجَدْنَا عَلَيْهَٓا اٰبَٓاءَنَا
وَاللّٰهُ اَمَرَنَا بِهَاۜ قُلْ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَأْمُرُ بِالْفَحْشَٓاءِۜ اَتَقُولُونَ عَلَى اللّٰهِ
مَا لَا تَعْلَمُونَ ﴿٢٨﴾ قُلْ اَمَرَ رَبّ۪ي بِالْقِسْطِۙ وَاَق۪يمُوا وُجُوهَكُمْ
عِنْدَ كُلِّ مَسْجِدٍ وَادْعُوهُ مُخْلِص۪ينَ لَهُ الدّ۪ينَۜ كَمَا بَدَاَكُمْ
تَعُودُونَۜ ﴿٢٩﴾ فَر۪يقًا هَدٰى وَفَر۪يقًا حَقَّ عَلَيْهِمُ الضَّلَالَةُۜ اِنَّهُمُ اتَّخَذُوا
الشَّيَاط۪ينَ اَوْلِيَٓاءَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ وَيَحْسَبُونَ اَنَّهُمْ مُهْتَدُونَ ﴿٣٠﴾

**23.** Gotin: "Rabbê me! Bêşik me li nefsa xwe zilim kir. Eger tu me nebexşînî û merhametê li me nekî, bêguman em ê bibin ji ehlê xusranê."
**24.** (Allah) got: "Ji hev re bi dijmintî ji wê derê dakevin! Li ser rûyê erdê heta demeke diyarkirî ji bo we wargeh/bi cihbûn û sûdmendî/debarî heye."
**25.** Got: "Hûn ê li wir bijîn û li wir bimirin û ji wê derê derkevin."
**26.** Gelî zaroyên Âdem! Me ji we re libasên ku awretê we dinuximîne û hûn pê dixemilin daxist. Lê libasa teqwayê herî bi xêrtir e. (Hûn çawa derveyî xwe bi libasê dixemilînin qelbê xwe jî bi teqwayê bixemilînin. Ev ji bo we bi xêrtir e.) Ev (nîmet) ên hanê, ji bo ku ew bifikirin û şîret bigirin ji ayetên Allah in.
**27.** Gelî zaroyên Âdem! Şeytan çawa ebeweyn (dê û bav) ê we ji cennetê derxist û ji bo ku awretên wan nîşanî hevdu bide libasên wan dabû derxistin, bila we jî nexe fitneyê/we jî nexapîne. (Lewre) ew (şeytan) û êla xwe, we ji cihê ku hûn wan nabînin dibînin. Bêguman me şeytan ji wan ên ku îmân neanîne re kiriye dost/heval.
**28.** Dema (wekî tewafkirina Kâ'be'yê wek tazî) xerabîyekê dikin (wiha) dibêjin: "Me bavûkalên xwe li ser vê rêyê dît. Allah ev tişt li me emir kir." Bibêje: "Bêguman Allah emrê xeranîyê/fuhşîyatê nake. Ma hûn der heqê Allah de tiştên ku hûn pê nizanin dibêjin?"
**29.** (Dîsa) bibêje: "Rabbê min edaletê emir kiriye. Di her çûna cihê sicûdê/mescîdê de berê xwe bidin wî û dînê xwe bitenê ji bo wî xalis bikin û ji wî re dûa bikin. Çawa ku wî hûn cara pêşîn xuliqandibû (hûn ê dîsa bi bal wî ve) vegerin.
**30.** (Wî) hîdayet daye hinekan û hinek jî rêşaşîtî li ser wan bûye heq. (Lewre) ewana dev ji Allah berdan û şeytanan ji xwe re kirin dost û digel vê zen dikin ku ew li ser heqîyê ne.
(Mirovek xwe li ser hîdayetê zen bike an jî xwe nisbetê kesên li ser rêya rast in bike, ev nisbetkirin qethîyen nayê vê maneyê ku ew li ser hîdayetê ye. Ji bo bûyîna ji ehlê hîdayetê divê ku mirov li ser heq û hîdayetê be. Muşrîkên Mekkeyê îdîa dikirin ku ew li ser dînê Îbrahîm (as) û Îsmaîl (as) bûn. Ji bo wan ayînên dînî yên ku ji ber xwe ve derxistibûn û dikirin, bi vê bawer bûn û wiha digotin: "Ev (ayîn) ên hanê ji bav û kalên me gihîştîye pêxemberan!"
Helbet dema ku heqîqet (ya rast) ji îdîayên wan cuda bû, ew bixwe jî ne li gorî îdîayên wan bilakîs li gorî heqîqetê hatin nirxandin. Bi sipartina vê (rastîyê) em dikarin bibêjin ku: Her kî be bila bibe, tewîla wî kesî eger berê wî ji mane û meqseda xuliqandina wî û ji tewhîdê ku ew jî banga hevpar yên hemû Rasûlan e dûr bixe; ew mirov bûye ji wan kesên ku rêşaşîtî li ser xwe heq kiriye û Allah (ac) wî kesî bi tewîla wî bixwe xerifandîye.)

يَا بَنٖٓي اٰدَمَ خُذُوا زٖينَتَكُمْ عِنْدَ كُلِّ مَسْجِدٍ وَكُلُوا وَاشْرَبُوا
وَلَا تُسْرِفُواۚ اِنَّهُ لَا يُحِبُّ الْمُسْرِفٖينَ ٣١ قُلْ مَنْ حَرَّمَ زٖينَةَ اللّٰهِ
الَّتٖٓي اَخْرَجَ لِعِبَادِهٖ وَالطَّيِّبَاتِ مِنَ الرِّزْقِۜ قُلْ هِيَ لِلَّذٖينَ اٰمَنُوا
فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا خَالِصَةً يَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ كَذٰلِكَ نُفَصِّلُ الْاٰيَاتِ
لِقَوْمٍ يَعْلَمُونَ ٣٢ قُلْ اِنَّمَا حَرَّمَ رَبِّيَ الْفَوَاحِشَ مَا ظَهَرَ مِنْهَا
وَمَا بَطَنَ وَالْاِثْمَ وَالْبَغْيَ بِغَيْرِ الْحَقِّ وَاَنْ تُشْرِكُوا بِاللّٰهِ مَا لَمْ يُنَزِّلْ
بِهٖ سُلْطَانًا وَاَنْ تَقُولُوا عَلَى اللّٰهِ مَا لَا تَعْلَمُونَ ٣٣ وَلِكُلِّ اُمَّةٍ
اَجَلٌۚ فَاِذَا جَٓاءَ اَجَلُهُمْ لَا يَسْتَاْخِرُونَ سَاعَةً وَلَا يَسْتَقْدِمُونَ ٣٤
يَا بَنٖٓي اٰدَمَ اِمَّا يَاْتِيَنَّكُمْ رُسُلٌ مِنْكُمْ يَقُصُّونَ عَلَيْكُمْ اٰيَاتٖيۙ
فَمَنِ اتَّقٰى وَاَصْلَحَ فَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ٣٥
وَالَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَاسْتَكْبَرُوا عَنْهَٓا اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ النَّارِۚ
هُمْ فٖيهَا خَالِدُونَ ٣٦ فَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنِ افْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا
اَوْ كَذَّبَ بِاٰيَاتِهٖۜ اُو۬لٰٓئِكَ يَنَالُهُمْ نَصٖيبُهُمْ مِنَ الْكِتَابِۜ حَتّٰٓى
اِذَا جَٓاءَتْهُمْ رُسُلُنَا يَتَوَفَّوْنَهُمْۙ قَالُٓوا اَيْنَ مَا كُنْتُمْ تَدْعُونَ مِنْ دُونِ
اللّٰهِۜ قَالُوا ضَلُّوا عَنَّا وَشَهِدُوا عَلٰٓى اَنْفُسِهِمْ اَنَّهُمْ كَانُوا كَافِرٖينَ ٣٧

**31.** Gelî zaroyên Âdem! Her cara ku hûn diçin cihê sicûdê/mescîdê zînetên xwe li xwe bikin. (Libasên xwe yên xweşik li xwe bikin, îbadetên xwe wekî muşrîkan tazî pêk neynin.) Û bixwin û vexwin, îsrafê nekin. (Lewre) ew, ji musrîfan hez nake.

**32.** Bibêje: "Ma rizqên paqij û zînetên ku Allah ji bo evdên xwe derxistîye kî heram kiriye?" (Û dîsa) bibêje: "Ew, di heyata dinyayê de ji bo mumînan e. Li axîretê jî bitenê ji mumînan re ye." Em bi vî awayî ji bo civakekî zana re ayetên xwe wiha bi kitekit/bi hûrgilî beyan dikin.

(Ji bo bergeha/bîrûboçûna nîmetên dinyayê bnr. 11/Hûd, 15-16.)

**33.** Bibêje: "Rabbê min ji bo we (ne tiştên ku we ji cem xwe lihev anîne) çi bi dizî û çi bi eşkerehî û hemû fihûş û guneh û êrîşên bi neheqî û beyî ku delîlekê we hebe hûn ji Allah re şirîkan çekin û der heqê Allah de ku hûn bi nezanî xeber bidin, (Allah) heram kiriye.

(Li ser mijara tunebûna delîlê şirkê bnr. 3/Âl-î Îmran, 151.)

**34.** Ji her ûmmetê re ecelek heye. Dema ku ecelê wan temam dibe ne seatek/lehzeyek li paş wê dimînin û ne jî dikarin bikevin pêş wê.

**35.** Gelî zaroyên Âdem! Dema ji nava we, pêxemberên ji we re ayetên min dixwînin/vedibêjin hatin her kî xwe bisitirîne û (nefsa xwe) islah bike, ji wan re qet tirs tune û ew xemgîn/mehzun jî nabin.

**36.** Lê ew ên ayetên me derewandine û li hemberî wan quretî kirine ehlê agir in û ew di wir de ebedî dimînin.

**37.** Ma ji wî kesê ku bi lihevanîna derewan bêbextî li Allah dike an jî ayetên wî diderewîne zalimtir kî heye? Nesîbê wan ê di Kitêbê de (xêr û şer a ji bo wan hatîye teqdîr kirin) digihîje wan. Dema ji bo can stendinê qasidên me tên cem wan dibêjin: "Kanê ew ên we ji Allah pê ve ji wan re dûa/lavahî dikirin?" Dibêjin: "Wan em (terk kirin û) winda bûn, çûn." Û di aleyha nefsa xwe de şahidî dan ku kafir bixwe ne.

قَالَ ادْخُلُوا فٖيٓ اُمَمٍ قَدْ خَلَتْ مِنْ قَبْلِكُمْ مِنَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِ
فِي النَّارِۜ كُلَّمَا دَخَلَتْ اُمَّةٌ لَعَنَتْ اُخْتَهَاۜ حَتّٰٓى اِذَا ادَّارَكُوا
فٖيهَا جَمٖيعًاۙ قَالَتْ اُخْرٰيهُمْ لِاُو۫لٰيهُمْ رَبَّنَا هٰٓؤُ۬لَٓاءِ اَضَلُّونَا فَاٰتِهِمْ
عَذَابًا ضِعْفًا مِنَ النَّارِۜ قَالَ لِكُلٍّ ضِعْفٌ وَلٰكِنْ
لَا تَعْلَمُونَ ﴿٣٨﴾ وَقَالَتْ اُو۫لٰيهُمْ لِاُخْرٰيهُمْ فَمَا كَانَ لَكُمْ عَلَيْنَا
مِنْ فَضْلٍ فَذُوقُوا الْعَذَابَ بِمَا كُنْتُمْ تَكْسِبُونَ ﴿٣٩﴾
اِنَّ الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَاسْتَكْبَرُوا عَنْهَا لَا تُفَتَّحُ لَهُمْ اَبْوَابُ
السَّمَٓاءِ وَلَا يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ حَتّٰى يَلِجَ الْجَمَلُ فٖي سَمِّ الْخِيَاطِۜ
وَكَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُجْرِمٖينَ ﴿٤٠﴾ لَهُمْ مِنْ جَهَنَّمَ مِهَادٌ وَمِنْ فَوْقِهِمْ
غَوَاشٍۜ وَكَذٰلِكَ نَجْزِي الظَّالِمٖينَ ﴿٤١﴾ وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ لَا نُكَلِّفُ نَفْسًا اِلَّا وُسْعَهَاۘ اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ الْجَنَّةِۚ
هُمْ فٖيهَا خَالِدُونَ ﴿٤٢﴾ وَنَزَعْنَا مَا فٖي صُدُورِهِمْ مِنْ غِلٍّ تَجْرٖي
مِنْ تَحْتِهِمُ الْاَنْهَارُۚ وَقَالُوا الْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذٖي هَدٰينَا لِهٰذَا
وَمَا كُنَّا لِنَهْتَدِيَ لَوْلَٓا اَنْ هَدٰينَا اللّٰهُۚ لَقَدْ جَٓاءَتْ رُسُلُ رَبِّنَا بِالْحَقِّۜ
وَنُودُٓوا اَنْ تِلْكُمُ الْجَنَّةُ اُو۫رِثْتُمُوهَا بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٤٣﴾

**38.** (Allah ji wan re) dibêje: "Hûn jî bi ummetên berî xwe re, tevî cin û însanan bikevin nava agir." Dema ku dikevin agir, lanetê li birayê xwe (li rêhevalên xwe yên weke wî rêşaş in) dike. Heta ku ew hemû li pey hev di agir de kom dibin; ew ên paşîn der heqê yên pêşîn de dibêjin: "Rabbê me! Ha ew ên ku me xapandibûn/xerifandibûn ev in. Ji ber vê, di agir de qat bi qat zêde ezab bide wan." (Allah) dibêje: "Ji bo we hemûyan qat bi qat (ezab) heye. Lê hûn pê nizanin."

(Ji bo rewşa wan lîder û pêşîyên ku meşrûîyeta xwe ji îslamê nastînin û gelên ku didin pey wan a li axîretê bnr. 2/Baqara, 167.)

**39.** Ew ên pêşîn jîyîne ji wan ên paşîn re wê bibêjin: "Hûn ji me qet ne çêtir in/ne serdest in. Di berdêla tiştên ku we bi dest xistîye ezabê bitamînin."

**40.** Bêguman ew ên ayetên me derewandine û li hemberî wan quretîyê dikin... Ji bo wan derîyên asîman venabe (dema dimirin rohê wan ji hêla/alîyê ehlê semayê ve bi xweşhalî/bi xoşnûdî nayên pêşwazkirin) û heta deve di qula derzîyê de derbas nebe nikarin têkevin cennetê. Em gunehkarên mucrîm wiha didin cezakirin.

**41.** Ji wan re ji cehennemê doşekekî (bi alav) û li ser wan jî lihêfekî ji agir (ku wan dinixumîne) heye. Ha em zilimkaran wiha didin cezakirin.

**42.** Heçî ew ên îmân anîne û amelên salih kirine jî em tu nefsî bi barekî ji quweta wî zêdetir binbar nakin. Evana, ehlê cennetê ne û wê di wir de ebedî bimînin.

**43.** Me di singa wan de ji kînê/ji kerbê/ji xezebê her çi hebe bitevahî derxistîye/sitendîye. Di binê wan de çem diherikin. (Û wiha) dibêjin: "Hemd ji wî Allahê re be ku em gihandine vê. Eger Allah me negihîştandiba van (nîmetan) ji ber xwe ve gihîştina me (ya van nîmetan) ne mimkûn bû. Sond be Rasûlên Allah bi heq ji me re hatin." Wê li wan wiha bê bangkirin: "Ji ber amelên we (yên salih) ew cenneta hûn jê re bûne waris, ev e."

وَنَادٰٓى اَصْحَابُ الْجَنَّةِ اَصْحَابَ النَّارِ اَنْ قَدْ وَجَدْنَا مَا وَعَدَنَا
رَبُّنَا حَقًّا فَهَلْ وَجَدْتُمْ مَا وَعَدَ رَبُّكُمْ حَقًّاۜ قَالُوا نَعَمْۚ فَاَذَّنَ
مُؤَذِّنٌ بَيْنَهُمْ اَنْ لَعْنَةُ اللّٰهِ عَلَى الظَّالِمِينَۙ ﴿٤٤﴾ اَلَّذِينَ يَصُدُّونَ
عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ وَيَبْغُونَهَا عِوَجًاۚ وَهُمْ بِالْاٰخِرَةِ كَافِرُونَۘ ﴿٤٥﴾ وَبَيْنَهُمَا
حِجَابٌۚ وَعَلَى الْاَعْرَافِ رِجَالٌ يَعْرِفُونَ كُلًّا بِسِيمٰيهُمْۚ وَنَادَوْا
اَصْحَابَ الْجَنَّةِ اَنْ سَلَامٌ عَلَيْكُمْ لَمْ يَدْخُلُوهَا وَهُمْ يَطْمَعُونَ ﴿٤٦﴾
وَاِذَا صُرِفَتْ اَبْصَارُهُمْ تِلْقَٓاءَ اَصْحَابِ النَّارِۙ قَالُوا رَبَّنَا لَا تَجْعَلْنَا
مَعَ الْقَوْمِ الظَّالِمِينَ ﴿٤٧﴾ وَنَادٰٓى اَصْحَابُ الْاَعْرَافِ رِجَالًا
يَعْرِفُونَهُمْ بِسِيمٰيهُمْ قَالُوا مَٓا اَغْنٰى عَنْكُمْ جَمْعُكُمْ
وَمَا كُنْتُمْ تَسْتَكْبِرُونَ ﴿٤٨﴾ اَهٰٓؤُ۬لَٓاءِ الَّذِينَ اَقْسَمْتُمْ لَا يَنَالُهُمُ اللّٰهُ
بِرَحْمَةٍۜ اُدْخُلُوا الْجَنَّةَ لَا خَوْفٌ عَلَيْكُمْ وَلَٓا اَنْتُمْ تَحْزَنُونَ ﴿٤٩﴾
وَنَادٰٓى اَصْحَابُ النَّارِ اَصْحَابَ الْجَنَّةِ اَنْ اَفِيضُوا عَلَيْنَا مِنَ الْمَٓاءِ
اَوْ مِمَّا رَزَقَكُمُ اللّٰهُۜ قَالُٓوا اِنَّ اللّٰهَ حَرَّمَهُمَا عَلَى الْكَافِرِينَۙ ﴿٥٠﴾
اَلَّذِينَ اتَّخَذُوا دِينَهُمْ لَهْوًا وَلَعِبًا وَغَرَّتْهُمُ الْحَيٰوةُ الدُّنْيَاۚ فَالْيَوْمَ
نَنْسٰيهُمْ كَمَا نَسُوا لِقَٓاءَ يَوْمِهِمْ هٰذَاۙ وَمَا كَانُوا بِاٰيَاتِنَا يَجْحَدُونَ ﴿٥١﴾




**44.** Ehlê cennetê, bang/gazî li cehennemîyan dikin: “Tiştê ku Rabbê me ji me re wead kiribû me heq/rast dît. Ma tiştê (ew ezaba) ku Rabbê we ji we re wead kiribû we jî rast dît?” (Ew) dibêjin: “Belê/Erê.” (Li ser vêya) bangvanek di navbera wan de wiha dike gazî: “Laneta Allah li ser zaliman be!”

**45.** Ew in ku; pêşî li rêya Allah girtine û tê de daxwaza çewtî/xwarîtî dikin/digerin. Ew axîretê jî înkar dikin.

**46.** Di navbera wan de perdeyek heye. Li A’rafê zilamên rawestî hene. Ew her kesî ji rûyên wan nas dikin. Ji wan ên ehlê (ku dê bikevin) cennetê re wiha dibêjin: “Silav li we!” Ev ên ku pir dilxwazê wê ne û hêvîdar in lê hêj neketine (cennetê).

**47.** Dema berê wan bi hêla ehlê cehennemê ve tê vegerandin (wiha) dibêjin: “Rabbê me! Me bi qewmê zalim re ligel hev negire!”

**48.** Ew ên li A’rafê gazî hinek zilamên ku ji sîmayên wan nas dikin re wiha deng dikin: “Ne komkirina (hêz û serweta) we û ne jî quretîya we (li hember ezaba Allah) qet tu feyde da we.”

**49.** Ew kesên ku we sond dixwar û digot: “Rahmeta Allah qet nagihîje wan?” ev in? Têkevin cennete! Ji we re tirs jî tune û hûn xemgîn jî nabin.”

(Di der heqê muxetebê banga di ayetê de îxtîlaf heye. Hin mufessîr dibêjin kesên li A’rafê bang li ehlê cennetê dikin, hin mufessîr jî wiha şîrove dikin ku Allah (ac) xîtab li ehlê A’rafê dike. Ya herî rast e Allah (ac) dizane.)

**50.** Ew ên cehennemî bangî cennetîyan dikin û dibêjin: “Hinek av an jî ji rizqê ku Allah daye we tiştekî bidin me/bi alî me ve biherikînin.” (Cennetî jî wiha) dibêjin: “Bi rastî Allah her du jî ji kafiran re heram/qedexe kiriye.”

**51.** Ew (kafir) in ku dînê xwe ji xwe re kirine lîstik û şahî û heyata dinyayê ew xapandine. Ji ber ku ewana rasthatina vê rojê ji bîr kiribûn û ayetên me înkar dikirin em ê jî îro wan ji bîr bikin.

وَلَقَدْ جِئْنَاهُمْ بِكِتَابٍ فَصَّلْنَاهُ عَلٰى عِلْمٍ هُدًى وَرَحْمَةً
لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٥٢﴾ هَلْ يَنْظُرُونَ اِلَّا تَاْوِيلَهُۜ يَوْمَ يَاْتِي تَاْوِيلُهُ
يَقُولُ الَّذِينَ نَسُوهُ مِنْ قَبْلُ قَدْ جَاءَتْ رُسُلُ رَبِّنَا بِالْحَقِّۚ فَهَلْ
لَنَا مِنْ شُفَعَاءَ فَيَشْفَعُوا لَنَا اَوْ نُرَدُّ فَنَعْمَلَ غَيْرَ الَّذِي كُنَّا
نَعْمَلُۜ قَدْ خَسِرُوا اَنْفُسَهُمْ وَضَلَّ عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ﴿٥٣﴾
اِنَّ رَبَّكُمُ اللّٰهُ الَّذِي خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ فِي سِتَّةِ
اَيَّامٍ ثُمَّ اسْتَوٰى عَلَى الْعَرْشِ يُغْشِي الَّيْلَ النَّهَارَ يَطْلُبُهُ
حَثِيثًاۙ وَالشَّمْسَ وَالْقَمَرَ وَالنُّجُومَ مُسَخَّرَاتٍ بِاَمْرِهٖۜ اَلَا لَهُ
الْخَلْقُ وَالْاَمْرُۜ تَبَارَكَ اللّٰهُ رَبُّ الْعَالَمِينَ ﴿٥٤﴾ اُدْعُوا رَبَّكُمْ
تَضَرُّعًا وَخُفْيَةًۜ اِنَّهُ لَا يُحِبُّ الْمُعْتَدِينَۚ ﴿٥٥﴾ وَلَا تُفْسِدُوا
فِي الْاَرْضِ بَعْدَ اِصْلَاحِهَا وَادْعُوهُ خَوْفًا وَطَمَعًاۜ اِنَّ رَحْمَتَ
اللّٰهِ قَرِيبٌ مِنَ الْمُحْسِنِينَ ﴿٥٦﴾ وَهُوَ الَّذِي يُرْسِلُ
الرِّيَاحَ بُشْرًا بَيْنَ يَدَيْ رَحْمَتِهٖۜ حَتّٰى اِذَا اَقَلَّتْ سَحَابًا ثِقَالًا
سُقْنَاهُ لِبَلَدٍ مَيِّتٍ فَاَنْزَلْنَا بِهِ الْمَاءَ فَاَخْرَجْنَا بِهِ مِنْ كُلِّ
الثَّمَرَاتِۜ كَذٰلِكَ نُخْرِجُ الْمَوْتٰى لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ ﴿٥٧﴾

**52.** Sond be me ji bo wan, ji bo civakeke mumîn wek hîdayet û rahmet Kitêbeke li ser ilmê mufesselbûyî, anîye.

**53.** Ma ew, ji tewîla/ji pêk hatina wê (heqîqeta ku agahîya wê daye) pê ve li hêvîya tiştekî din in? Roja ku tewîla/pêk hatina wê tiştê (ku pê agahdar bûn) were, ew kesên berê ku ew ji bîr kiribûn wê bibêjin: "Bêguman Rasûlên Rabbê me ji me re ya heq anîbûn. Gelo aniha şefaetvanên ku li me şefaetê bikin (ji bo em ji ezabê Allah xelas bibin) heye? An jî em ê şûnde (li dinyayê) bihatana vegerandin û ji ên ku me berê kiribûn cuda amelên din (amelên ku Allah ji wan razî ye) bikirana?" Muheqeq ewana xwe bixwe xisirandine û ji ber xwe ve bêbextî (û xurafe) yên lihev anîbûn (û li Allah kiribûn) winda bûn çûn.

**54.** Bêguman Rabbê we, ew Allah e ku erd û asîmân di şeş rojan de xuliqandîye û paşê îstîwayê arşê kiriye.[1] Rojê, bi şeva ku tim dide pey dinixûmîne. Roj û hîv û stêrk ji emrê wî re sitûxwar in. Baldar bin/Dîqat bikin! Xuliqandin jî emir jî aîdê Allah e.[2] Ew Allahê Rabbê aleman e, çi qas berz e/bilind e.

(1- Ji bo Nav û sifetên Allah (ac) bnr. 3/Âl-î Îmran, 181; 7/A'râf, 180; 57/Hadîd, 4.

2- Allah (ac) sifeta xwe ya xuliqandinê û sifeta emir û hukim û qanûndanînê di heman hevokê de zikir kiriye. Ew, çawa ku di xuliqandinê de şirîk qebûl nake di hukim û qanûnçêkerîyê de jî şirîkan qebûl nake. (Bnr.18/Kehf, 26) Çawa ku xuliqandin bê qeyd û şert aîdê Allah e (ac) weke vê serwerî/hakimîyet jî aîdê Allah e (ac). Kesên ku rayeya zagonsazîyê/qanûnçêkerîyê ji xeynî Allah bidin gel an hikumdar an jî parlamentoyê, di vê rewşê de şirîk ji Allah (ac) re çêkirine û wan tiştan ji xwe re wek Rab girtine. (Bnr.9/Tewbe, 31; 12/Yûsuf, 40))

**55.** Ji Rabbê xwe re ji dil (bi lavêlav) û bi dizî (ji nav û dil) dûa bikin. Bêguman ew (Allah), kesên ku (di dûayê de) ji hedê xwe borîye hez nake.

**56.** Piştî islaha ser rûyê erdê (ku Allah bi tekûzî svererast kiriye) fesadîyê dernexin. Bi tirs û hêvî ji wî re dûa bikin. Bi rastî rahmeta Allah pir nêzîkî muhsînan (kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik teqdîm dikin) e.

**57.** Ew ê di pêşîya rahmeta xwe (baranê) de wek mizgîn bayê dişîne ew e. Dema ew (ba) ewrên giran hildigirin em wan (ewran) ber bi beldeyekî mirî de dişinin/kaşdikin û bi vêya em ji wê derê re avê dadixînin û bi vî awayî em ji hemû fêkîyan/mehsûlan derdixînin. Em mirîyan jî bi vê awayê (ji gorên wan) vedijînin. Hêvî heye ku hûn bifikirin û şîret bigirin.

وَالْبَلَدُ الطَّيِّبُ يَخْرُجُ نَبَاتُهُ بِاِذْنِ رَبِّهٖۚ وَالَّذٖى خَبُثَ
لَا يَخْرُجُ اِلَّا نَكِدًاۜ كَذٰلِكَ نُصَرِّفُ الْاٰيَاتِ لِقَوْمٍ
يَشْكُرُونَ ﴿٥٨﴾ لَقَدْ اَرْسَلْنَا نُوحًا اِلٰى قَوْمِهٖ فَقَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا
اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُۜ اِنّٖٓى اَخَافُ عَلَيْكُمْ عَذَابَ
يَوْمٍ عَظٖيمٍ ﴿٥٩﴾ قَالَ الْمَلَاُ مِنْ قَوْمِهٖٓ اِنَّا لَنَرٰيكَ فٖى ضَلَالٍ
مُبٖينٍ ﴿٦٠﴾ قَالَ يَا قَوْمِ لَيْسَ بٖى ضَلَالَةٌ وَلٰكِنّٖى رَسُولٌ
مِنْ رَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿٦١﴾ اُبَلِّغُكُمْ رِسَالَاتِ رَبّٖى وَاَنْصَحُ لَكُمْ
وَاَعْلَمُ مِنَ اللّٰهِ مَا لَا تَعْلَمُونَ ﴿٦٢﴾ اَوَعَجِبْتُمْ اَنْ جَٓاءَكُمْ ذِكْرٌ
مِنْ رَبِّكُمْ عَلٰى رَجُلٍ مِنْكُمْ لِيُنْذِرَكُمْ وَلِتَتَّقُوا
وَلَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ ﴿٦٣﴾ فَكَذَّبُوهُ فَاَنْجَيْنَاهُ وَالَّذٖينَ مَعَهُ
فِى الْفُلْكِ وَاَغْرَقْنَا الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَاۜ اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمًا عَمٖينَ ﴿٦٤﴾
وَاِلٰى عَادٍ اَخَاهُمْ هُودًاۜ قَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ
مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُۜ اَفَلَا تَتَّقُونَ ﴿٦٥﴾ قَالَ الْمَلَاُ الَّذٖينَ كَفَرُوا مِنْ قَوْمِهٖٓ
اِنَّا لَنَرٰيكَ فٖى سَفَاهَةٍ وَاِنَّا لَنَظُنُّكَ مِنَ الْكَاذِبٖينَ ﴿٦٦﴾ قَالَ
يَا قَوْمِ لَيْسَ بٖى سَفَاهَةٌ وَلٰكِنّٖى رَسُولٌ مِنْ رَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿٦٧﴾

**58.** Gîhayê bajarê rind bi îzna Rabbê te derdikeve. Ji yê (bajarê) xerab jî ji gîhayekî bêkêr/bê feyde pê ve tiştek dernakeve. Ji bo civakeke şikurdar em a wiha ayetên xwe cur bi cur beyan dikin.

**59.** Sond be me Nûh jî ji qewmê wî re (wek pêxember) şand û gotibû: "Gelî qewmê min! Ji Allah re îbadetê/evdîtîyê bikin, ji we re ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh tune. Bi rastî ez ji bo we ji ezabê rojeke mezin ditirsim."

**60.** Giregirên qewmê wî, jê re gotibûn: "Bi rastî em te di nava şaşîtîyeke eşkere de dibînin."

**61.** (Nûh jî) gotibû: "Gelî qewmê min! Di min de qet tu şaşîtî/xerifîtî tune. Lê ez qasidek im ji hêla/alîyê Rabbê aleman ve (ji hêla/ji alîyê Allah ve hatime şandin)."

**62.** "Ez wehîya/rîsaleta Rabbê xwe radigihînim û şîretê li we dikim. Û tiştên ku hûn pê nizanin ez bi wê ya (bi wehîya ku ji min re) ji Allah tê, dizanim."

**63.** Ma hûn heyirîne ku ji bo hûn bitirsin û xwe biparêzin û merhamet li we bê kirin, ji nava we zilamek bi zikrekî/bi bîrxistinekî ku we pê hişyar dike, hatîye?

**64.** Wî derewandin. Me jî wî û ew ên bi wî re di keştîyê de bûn xelas kirin û ew ên ayetên me înkar dikirin jî xeniqandin. (Lewre) ew qewmekî kor bûn (heqîqetê nedidîtin).

**65.** Me ji qewmê Ad re jî birayên wan Hûd (wek pêxember şand). (Hûd ji qewmê xwe re) got: "Gelî qewmê min! Ji Allah re îbadetê/evdîtîyê bikin. Ji we re ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh tune. Ma hê jî hûn natirsin û xwe naparêzin?"

**66.** Ji giregirên qewmê wî ew ên kafir gotibûn: "Bi rastî em te yekî wek kêmaqil dibînin û em dibêjin qey tu mirovekî derewker î."

**67.** (Hûd) gotibû: "Gelî qewmê min! Di min de kêmaqilî tune. Lê bi rastî ez qasidek im ku ji (hêla/alîyê) Rabbê aleman ve (hatime şandin)."

اُبَلِّغُكُمْ رِسَالَاتِ رَبّ۪ي وَاَنَا۬ لَكُمْ نَاصِحٌ اَم۪ينٌ ﴿٦٨﴾
اَوَعَجِبْتُمْ اَنْ جَٓاءَكُمْ ذِكْرٌ مِنْ رَبِّكُمْ
عَلٰى رَجُلٍ مِنْكُمْ لِيُنْذِرَكُمْ وَاذْكُرُٓوا اِذْ جَعَلَكُمْ
خُلَفَٓاءَ مِنْ بَعْدِ قَوْمِ نُوحٍ وَزَادَكُمْ فِي الْخَلْقِ بَصْطَةً
فَاذْكُرُٓوا اٰلَٓاءَ اللّٰهِ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ ﴿٦٩﴾ قَالُٓوا اَجِئْتَنَا
لِنَعْبُدَ اللّٰهَ وَحْدَهُ وَنَذَرَ مَا كَانَ يَعْبُدُ اٰبَٓاؤُ۬نَا فَأْتِنَا بِمَا تَعِدُنَٓا
اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِق۪ينَ ﴿٧٠﴾ قَالَ قَدْ وَقَعَ عَلَيْكُمْ
مِنْ رَبِّكُمْ رِجْسٌ وَغَضَبٌ اَتُجَادِلُونَن۪ي ف۪ٓي اَسْمَٓاءٍ سَمَّيْتُمُوهَٓا
اَنْتُمْ وَاٰبَٓاؤُ۬كُمْ مَا نَزَّلَ اللّٰهُ بِهَا مِنْ سُلْطَانٍ فَانْتَظِرُٓوا
اِنّ۪ي مَعَكُمْ مِنَ الْمُنْتَظِر۪ينَ ﴿٧١﴾ فَاَنْجَيْنَاهُ وَالَّذ۪ينَ
مَعَهُ بِرَحْمَةٍ مِنَّا وَقَطَعْنَا دَابِرَ الَّذ۪ينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا
وَمَا كَانُوا مُؤْمِن۪ينَ ﴿٧٢﴾ وَاِلٰى ثَمُودَ اَخَاهُمْ صَالِحًا
قَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ قَدْ جَٓاءَتْكُمْ
بَيِّنَةٌ مِنْ رَبِّكُمْ هٰذِه۪ نَاقَةُ اللّٰهِ لَكُمْ اٰيَةً فَذَرُوهَا تَأْكُلْ
ف۪ٓي اَرْضِ اللّٰهِ وَلَا تَمَسُّوهَا بِسُٓوءٍ فَيَأْخُذَكُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٧٣﴾

**68.** "Ez wehîya/rîsaleta Rabbê xwe radigihînim û ez ji bo we şîretkekî ewledar im."

**69.** "Ma hûn heyirîne ku ji bo hûn bitirsin û xwe biparêzin ji nava we zilamek bi zikrekî/bi bîrxistinekî ku we pê hişyar dike, hatîye? Bi bîr bînin! Piştî qewmê Nûh, (Allah) di şûna wan de (li ser rûyê erdê) hûn kirin xelîfe û di xuliqandinê de firehî (qam û qilafet û hêz) dabû we. Nexwe nîmetê Rabbê xwe bi bîr bînin da ku hûn bigihîjin rizgarîyê/xelasîyê."

**70.** (Qewmê wî) gotin: "Ma tu ji bo ku em ji yek Allahê re bi tenê îbadet bikin û dev ji tişt (îlâh) ên ku bavûkalên me ji wan re îbadet dikirin berdin, ji me re hatî? Eger tu di gotina xwe de rast î, (ezaba) te wead kiriye bîne (em bibînin)!"

**71.** Bi rastî ji Rabbê we ji we re ezabekî dijwar û xezeb heq bûye. Ma hûn ji bo wan navên ku Allah der heqê wan de qet tu delîl danexistîye û we û bavên xwe binav kiriye bi min re dikevin nîqaşê? (Hûn) lihêvîyê bimînin (em bibînin)! Ez jî bi we re rawestî me.

**72.** Me ew û ew ên bi wî re bi rahmetekî ji terefê xwe xelas kirin. Ew ên ayetên me derewandibûn jî me (koka wan qirand û) paşîya wan anî. Ew ne mumîn jî bûn.

**73.** Û me ji qewmê Semûd re jî birayên wan Salih (wek pêxember şand). (Salih ji qewmê xwe re) gotibû: "Gelî qewmê min! Ji Allah re îbadetê/evdîtîyê bikin. Ji we re ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh tune. Bêguman ji we re ji Rabbê we (mûcîzeyek) vikîvekirî hat. Ev deveya mê ya Allah, ji we re ayetek/mûcîzeyek e. Bihêlin bila di erdê Allah de biçêre. Qet tu xerabîyê lê nekin. Nexwe wê ezabekî biêş û jan bi we bigire."

وَاذْكُرُٓوا اِذْ جَعَلَكُمْ خُلَفَٓاءَ مِنْ بَعْدِ عَادٍ
وَبَوَّاَكُمْ فِي الْاَرْضِ تَتَّخِذُونَ مِنْ سُهُولِهَا قُصُورًا
وَتَنْحِتُونَ الْجِبَالَ بُيُوتًاۚ فَاذْكُرُٓوا اٰلَٓاءَ اللّٰهِ وَلَا تَعْثَوْا
فِي الْاَرْضِ مُفْسِدِينَ ﴿٧٤﴾ قَالَ الْمَلَاُ الَّذِينَ اسْتَكْبَرُوا
مِنْ قَوْمِه۪ لِلَّذِينَ اسْتُضْعِفُوا لِمَنْ اٰمَنَ مِنْهُمْ اَتَعْلَمُونَ
اَنَّ صَالِحًا مُرْسَلٌ مِنْ رَبِّه۪ؕ قَالُٓوا اِنَّا بِمَٓا اُرْسِلَ
بِه۪ مُؤْمِنُونَ ﴿٧٥﴾ قَالَ الَّذِينَ اسْتَكْبَرُٓوا اِنَّا بِالَّذ۪ٓي اٰمَنْتُمْ
بِه۪ كَافِرُونَ ﴿٧٦﴾ فَعَقَرُوا النَّاقَةَ وَعَتَوْا عَنْ اَمْرِ
رَبِّهِمْ وَقَالُوا يَا صَالِحُ ائْتِنَا بِمَا تَعِدُنَٓا اِنْ كُنْتَ
مِنَ الْمُرْسَلِينَ ﴿٧٧﴾ فَاَخَذَتْهُمُ الرَّجْفَةُ فَاَصْبَحُوا ف۪ي دَارِهِمْ
جَاثِمِينَ ﴿٧٨﴾ فَتَوَلّٰى عَنْهُمْ وَقَالَ يَا قَوْمِ لَقَدْ اَبْلَغْتُكُمْ
رِسَالَةَ رَبّ۪ي وَنَصَحْتُ لَكُمْ وَلٰكِنْ لَا تُحِبُّونَ
النَّاصِح۪ينَ ﴿٧٩﴾ وَلُوطًا اِذْ قَالَ لِقَوْمِه۪ٓ اَتَاْتُونَ الْفَاحِشَةَ
مَا سَبَقَكُمْ بِهَا مِنْ اَحَدٍ مِنَ الْعَالَم۪ينَ ﴿٨٠﴾ اِنَّكُمْ لَتَاْتُونَ
الرِّجَالَ شَهْوَةً مِنْ دُونِ النِّسَٓاءِؕ بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ مُسْرِفُونَ ﴿٨١﴾

**74.** “Bi bîr bînin! Piştî qewmê Ad (Allah) di şûna wan de hûn kirin xelîfe û li ser rûyê erdê bi cih kirin. We di deştên wan de koşk çêdikir û di çiyayên wan de jî xanîyan dikola. Êdî nîmetên Allah bînin bîra xwe û bi tevdanê li ser erdê alozî/zêdegavî/fesadê dernexin/nekin.”

**75.** Ji giregirên qewmê wî, ew ên mustekbîr ji wan mustazafên îmân anîne re gotibûn: “Ma bera hûn dizanin ku bi rastî Salih ji hêla/ji alîyê Rabbê xwe ve (wek Rasûl) hatîye şandin?” (Wan jî) gotibûn: “Bêguman em, bawermendên tiştê ku ew pê hatîye şandî ne.”

**76.** Ew ên mustekbîr jî gotin: “Em, ji tiştên ku hûn pê îmân tînin re bûne kafir!”

**77.** Wê deveya mê serjêkirin. Dijî emrê Rabbê xwe derketin û gotin: “Ya Salih! Eger bi rastî tu ji Rasûlan bî ka ew (ezaba) ku te li me wead kiribû ji me re bîne.”

**78.** (Li ser vê) erdhêjeke erjeng/tirsnak bi wan girt û di warê xwe de li ser çokên xwe man.

**79.** (Salih) ji wan rû vegerand û (wiha) got: “Gelî qewmê min! Min rîsaleta/hinarîya Rabbê xwe ragihande we û şîret li we kir. Lê belê hûn hez şîretkaran nakin.”

**80.** Me Lût jî (ji qewmê wî re) şand. Wî (ji qewmê xwe re) got: “Ma wê fuhşîyata ku berî we di aleman de tu kesî nekiribû, hûn dikin?”

**81.** “Bêguman hûn dev ji jinan berdidin û bi şehwetê nêzî zilaman dibin? Bi rastî hûn qewmekî zêdegav/mufrît in.”

وَمَا كَانَ جَوَابَ قَوْمِهٖٓ اِلَّٓا اَنْ قَالُٓوا اَخْرِجُوهُمْ
مِنْ قَرْيَتِكُمْۚ اِنَّهُمْ اُنَاسٌ يَتَطَهَّرُونَ ﴿٨٢﴾ فَاَنْجَيْنَاهُ وَاَهْلَهُٓ
اِلَّا امْرَاَتَهُۘ كَانَتْ مِنَ الْغَابِرِينَ ﴿٨٣﴾ وَاَمْطَرْنَا عَلَيْهِمْ
مَطَرًاۜ فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُجْرِمِينَ ﴿٨٤﴾
وَاِلٰى مَدْيَنَ اَخَاهُمْ شُعَيْبًاۜ قَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ
مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُۜ قَدْ جَٓاءَتْكُمْ بَيِّنَةٌ مِنْ
رَبِّكُمْ فَاَوْفُوا الْكَيْلَ وَالْمِيزَانَ وَلَا تَبْخَسُوا النَّاسَ
اَشْيَٓاءَهُمْ وَلَا تُفْسِدُوا فِي الْاَرْضِ بَعْدَ اِصْلَاحِهَاۜ ذٰلِكُمْ
خَيْرٌ لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَۚ ﴿٨٥﴾ وَلَا تَقْعُدُوا
بِكُلِّ صِرَاطٍ تُوعِدُونَ وَتَصُدُّونَ عَنْ سَبِيلِ
اللّٰهِ مَنْ اٰمَنَ بِهٖ وَتَبْغُونَهَا عِوَجًاۚ وَاذْكُرُٓوا اِذْ كُنْتُمْ
قَلِيلًا فَكَثَّرَكُمْۖ وَانْظُرُوا كَيْفَ كَانَ
عَاقِبَةُ الْمُفْسِدِينَ ﴿٨٦﴾ وَاِنْ كَانَ طَٓائِفَةٌ مِنْكُمْ
اٰمَنُوا بِالَّذٖٓي اُرْسِلْتُ بِهٖ وَطَٓائِفَةٌ لَمْ يُؤْمِنُوا فَاصْبِرُوا
حَتّٰى يَحْكُمَ اللّٰهُ بَيْنَنَاۚ وَهُوَ خَيْرُ الْحَاكِمِينَ ﴿٨٧﴾

**82.** Bersiva qewmê wî ji vê pê ve ne tiştekî din bû: "Wan ji warên xwe derxînin. (Lewre) ewana însanên pir paqij in!"

**83.** Ji ber vê yekê me ji jina wî pê ve hemû malbata wî xelas kir. Lê ew (jina wî) ji wan ên paşvemayî (û helakbûyî) bû.

**84.** Me di ser wan de baranekê (ezabê) barand. Aqubeta gunehkarên mucrîm çawa bûye, lê binêrê û bibine!

**85.** Me ji qewmê Medyen re jî birayên wan Şuayb (şandibû). Gotibû: "Gelî qewmê min! Ji Allah re îbadetê/evdîtîyê bikin. Ji we re ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh tune. Bêguman ji we re ji Rabbê we (mûcîzeyek) vikîvekirî hat. Wezin û pîvanê bê kêmasî bigirin û eşyayê însanan (bihayê wî neşikênin û) kêm nedin wan. Piştî islaha wê, li ser rûyê erdê fesadîyê dernexin. Eger hûn mumîn bin ev, ji we re bixêrtir e."

**86.** Bi xwestina (rêya Allah) çewt/xelet bibe û ji bo ew ên îman bi Allah anîne ji rê vegerînin bi gef xwarinê/bi tehdîdê li ser her serê rêyan rûnenin. Bi bîr bînin! Hûn hindik bûn wî hûn zêde kirin. Aqubeta mufsîdan çawa bûye, lê binêrin û bibînin."

**87.** "Eger ji nava we komek tiştê ez pê hatime îmân anîbe û hinekan jî bawer nekiribe, êdî heta Allah di navbera me de hukmê xwe datîne sebir bikin. Bêguman Allah bi xêrtirê hukimdayînan e."

قَالَ الْمَلَاُ الَّذ۪ينَ اسْتَكْبَرُوا مِنْ قَوْمِه۪ لَنُخْرِجَنَّكَ يَا شُعَيْبُ
وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا مَعَكَ مِنْ قَرْيَتِنَٓا اَوْ لَتَعُودُنَّ ف۪ي مِلَّتِنَاۜ قَالَ
اَوَلَوْ كُنَّا كَارِه۪ينَ ﴿٨٨﴾ قَدِ افْتَرَيْنَا عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا اِنْ عُدْنَا
ف۪ي مِلَّتِكُمْ بَعْدَ اِذْ نَجّٰينَا اللّٰهُ مِنْهَاۜ وَمَا يَكُونُ لَنَٓا اَنْ نَعُودَ
ف۪يهَٓا اِلَّٓا اَنْ يَشَٓاءَ اللّٰهُ رَبُّنَاۜ وَسِعَ رَبُّنَا كُلَّ شَيْءٍ عِلْمًاۜ عَلَى
اللّٰهِ تَوَكَّلْنَاۜ رَبَّنَا افْتَحْ بَيْنَنَا وَبَيْنَ قَوْمِنَا بِالْحَقِّ وَاَنْتَ
خَيْرُ الْفَاتِح۪ينَ ﴿٨٩﴾ وَقَالَ الْمَلَاُ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا مِنْ قَوْمِه۪ لَئِنِ اتَّبَعْتُمْ
شُعَيْبًا اِنَّكُمْ اِذًا لَخَاسِرُونَ ﴿٩٠﴾ فَاَخَذَتْهُمُ الرَّجْفَةُ فَاَصْبَحُوا
ف۪ي دَارِهِمْ جَاثِم۪ينَۚ ﴿٩١﴾ اَلَّذ۪ينَ كَذَّبُوا شُعَيْبًا كَاَنْ لَمْ يَغْنَوْا
ف۪يهَاۚ اَلَّذ۪ينَ كَذَّبُوا شُعَيْبًا كَانُوا هُمُ الْخَاسِر۪ينَ ﴿٩٢﴾ فَتَوَلّٰى
عَنْهُمْ وَقَالَ يَا قَوْمِ لَقَدْ اَبْلَغْتُكُمْ رِسَالَاتِ رَبّ۪ي وَنَصَحْتُ
لَكُمْۚ فَكَيْفَ اٰسٰى عَلٰى قَوْمٍ كَافِر۪ينَ ﴿٩٣﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَا ف۪ي قَرْيَةٍ
مِنْ نَبِيٍّ اِلَّٓا اَخَذْنَٓا اَهْلَهَا بِالْبَأْسَٓاءِ وَالضَّرَّٓاءِ لَعَلَّهُمْ يَضَّرَّعُونَ ﴿٩٤﴾
ثُمَّ بَدَّلْنَا مَكَانَ السَّيِّئَةِ الْحَسَنَةَ حَتّٰى عَفَوْا وَقَالُوا قَدْ مَسَّ
اٰبَٓاءَنَا الضَّرَّٓاءُ وَالسَّرَّٓاءُ فَاَخَذْنَاهُمْ بَغْتَةً وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٩٥﴾



**88.** Giregirên ji qewmê wî, ew ên mustekbîr wiha gotibûn: "Ya Şuayb! Em ê te û ew ên ku îman bi te anîne teqez ji welatê xwe derêxin. An jî muheqeq hûn ê vegerin ser dînê me." (Şuayb) got: "Em nexwazin jî?"

(Civakên şirkê û ew baronên şirkê ku kedxwar û xwînmijê wan in, herûdaîm kesên muwahhîd bi slogana "An hez bike an jî biterikîne!" tehdît kirine. Daxwaza wan ew tiştê ku kesên muwahhîd an dê ji batila wan razî be û hez wan û batilên wan bike an jî wê ew kesên muwahhîd bi darê zorê ji war û welatê wan derxînin. Li ser mijara ku hemû civakên şirkê, kesên muwahhîd bi heman vegotinê tehdît kirine de bnr. 14/Îbrahîm, 13.)

**89.** "Pîştî ku Allah em jê xelas kiriye eger em dîsa vegerin ser dînê we, wê demê dibe ku li ser navê Allah me neweyî/bêbextî kiriye. Daxwaza/meşîeta Allahê Rabbê me ne tê de, teqez ne mimkûn e ku em carekî din vegerin ser wê (dînê) we. Rabbê me bi ilmê xwe her tiştî dorpêç kiriye. Me bitenê ji Allah re tewekkul kiriye. Rabbê me! Tu di navbera me û qewmê me de bi heqî hukmê xwe bide. Tu bi xêrtirê hikumdaran î."

**90.** Ji giregirên qewmê wî ew ên kafir gotibûn: "Sond be! Eger hûn bidin pey Şuayb hûn ê bibin ji wan ên ku bi xusranê ve ketine."

**91.** (Li ser vê) erdhêjeke erjeng/tirsnak bi wan girt. Di warê xwe bixwe de çokdayî man.

**92.** Ew ên ku Şuayb derewandibûn (hene); her wekî ku qet li wê derê bi dewlemendî bi cih nebibin... Ew ên ku Şuayb derewandibûn (hene); ew ên esil bi xusranê ve ketibûn ew bixwe bûn.

**93.** Ji wan rû vegerand û gotibû: "Gelî qewmê min! Sond be min rîsaleta/hinarîya Rabbê xwe ragihande we û şîret li we kir. Ma ez ê çawa li ber qewmê kafir bikevim/xemgîn bibim?"

**94.** Me ji kîjan welatî re pêxemberek şandibe ji bo ku ehlê wê derê bi situxwarî (ya ji Allah re) û bi dilsozî lavahîyê bikin me wan bi xîzanî û bi tengezarî îmtîhan kiriye.

**95.** (Di îmtîhana xîzanî û tengezarîyê de ji dilûcan zarezar û lavahî nekirin.) Pîştre me xerabî bi qencîyê guherand. Axir (di nava xweşîyê de ji hêla mal û jimar ve) zêde bûn. (Bîr nebirin ku Allah ewana bi belayan îmtîhan dike û sebra wan; bi nîmetan îmtîhan dike û şikra wan diceribîne û) gotin: "Xîzanî û refah carinan bi bavûkalên me jî girtibû. (Nexwe ev, ne îmtîhan e; serpêhatîyên ji rêzê ye.) (Li ser vê) me ji dema ku qet haya wan jê tune bû, ji nîşka ve bi wan girt.

وَلَوْ اَنَّ اَهْلَ الْقُرٰٓى اٰمَنُوا وَاتَّقَوْا لَفَتَحْنَا عَلَيْهِمْ بَرَكَاتٍ
مِنَ السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِ وَلٰكِنْ كَذَّبُوا فَاَخَذْنَاهُمْ
بِمَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿٩٦﴾ اَفَاَمِنَ اَهْلُ الْقُرٰٓى اَنْ يَاْتِيَهُمْ
بَاْسُنَا بَيَاتًا وَهُمْ نَٓائِمُونَۜ ﴿٩٧﴾ اَوَاَمِنَ اَهْلُ الْقُرٰٓى اَنْ يَاْتِيَهُمْ
بَاْسُنَا ضُحًى وَهُمْ يَلْعَبُونَ ﴿٩٨﴾ اَفَاَمِنُوا مَكْرَ اللّٰهِۚ
فَلَا يَاْمَنُ مَكْرَ اللّٰهِ اِلَّا الْقَوْمُ الْخَاسِرُونَۚ ﴿٩٩﴾ اَوَلَمْ يَهْدِ لِلَّذِينَ
يَرِثُونَ الْاَرْضَ مِنْ بَعْدِ اَهْلِهَٓا اَنْ لَوْ نَشَٓاءُ اَصَبْنَاهُمْ بِذُنُوبِهِمْۚ
وَنَطْبَعُ عَلٰى قُلُوبِهِمْ فَهُمْ لَا يَسْمَعُونَ ﴿١٠٠﴾ تِلْكَ الْقُرٰى نَقُصُّ
عَلَيْكَ مِنْ اَنْبَٓائِهَاۚ وَلَقَدْ جَٓاءَتْهُمْ رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِۚ فَمَا
كَانُوا لِيُؤْمِنُوا بِمَا كَذَّبُوا مِنْ قَبْلُۜ كَذٰلِكَ يَطْبَعُ اللّٰهُ
عَلٰى قُلُوبِ الْكَافِرِينَ ﴿١٠١﴾ وَمَا وَجَدْنَا لِاَكْثَرِهِمْ
مِنْ عَهْدٍۚ وَاِنْ وَجَدْنَٓا اَكْثَرَهُمْ لَفَاسِقِينَ ﴿١٠٢﴾
ثُمَّ بَعَثْنَا مِنْ بَعْدِهِمْ مُوسٰى بِاٰيَاتِنَٓا اِلٰى فِرْعَوْنَ وَمَلَا۬ئِهٖ
فَظَلَمُوا بِهَاۚ فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُفْسِدِينَ ﴿١٠٣﴾
وَقَالَ مُوسٰى يَا فِرْعَوْنُ اِنّ۪ي رَسُولٌ مِنْ رَبِّ الْعَالَمِينَۙ ﴿١٠٤﴾

**96.** Eger ehlê wan welatan îmân bianîna û xwe (ji Allah) biparastana, me yê di ser wan de ji erd û esmanan (derîyê) bereketê vekira. Lê wan derewandin. Me jî ji ber tişt (guneh) ên ku bi dest xwe xistibûn bi (ezab) wan girt.

**97.** Nexwe ehlê wan welatan ji xwe ewle ne dema ew bi şev raketî/razayî bin ku ezabê me bi ser wan de neyê?

**98.** Nexwe ehlê wan welatan, dema berbangê/sibehê di kêf û şahîyê de bin gelo ma emîn bûn ku wê ezaba me bi wan negire?

**99.** Nexwe ew, ji mekrên/ji dafikên Allah ewle/emîn bûn? Lê ji civaka ku li ber zîyanê ketîye pê ve kes ji dafikên Allah emîn nabe.

**100.** Ji bo ew ên ku bûne warisê ser rûyê erdê, qey hê jî ew heqîqet (ku bi serê wanên borî de hatibû) diyar nebûye? Eger em bixwazin em ê ji ber gunehên wan mûsîbetên cur bi cur bînin serê wan û me yê qelbê wan mohr bikira. Her wiha êdî seh nedikirin.

**101.** Ev welat in ku em ji te re qiseyên wan vedibêjin. Sond be pêxemberên wan ji wan re bi delîlên eşkere hatibûn. Lê ji ber ku berê de înkar kiribûn nexwestin (ji yê nû hatî re) îmân bînin. Vaye Allah, qelbê kafiran wiha mohr dike.

**102.** Me di pirên wan de (exlaqa) girêdayîya bi ehda xwe ve nedît. Lê belê me gelekên wan dîtin ku bi rastî fasiq in.

**103.** Paşê di pey wan de me Mûsa bi ayetên xwe ji Firewn û giregirên wî re şand. Wan (bi înkar û tinazîyên bi ayetên me re) zilimkarî kirin. Aqubeta mufsîdan çawa bûye, binêre.

**104.** Mûsa (ji Firewn re) gotibû: “Hê Firewn, bêguman ez Rasûlekî ku ji terefê Rabbê alemê ve (şandî) me.”

حَق۪يقٌ عَلٰٓى اَنْ لَٓا اَقُولَ عَلَى اللّٰهِ اِلَّا الْحَقَّۜ قَدْ جِئْتُكُمْ
بِبَيِّنَةٍ مِنْ رَبِّكُمْ فَاَرْسِلْ مَعِيَ بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَۜ ﴿١٠٥﴾ قَالَ
اِنْ كُنْتَ جِئْتَ بِاٰيَةٍ فَاْتِ بِهَٓا اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِق۪ينَ ﴿١٠٦﴾
فَاَلْقٰى عَصَاهُ فَاِذَا هِيَ ثُعْبَانٌ مُب۪ينٌۚ ﴿١٠٧﴾ وَنَزَعَ يَدَهُ فَاِذَا
هِيَ بَيْضَٓاءُ لِلنَّاظِر۪ينَ ﴿١٠٨﴾ قَالَ الْمَلَاُ مِنْ قَوْمِ فِرْعَوْنَ
اِنَّ هٰذَا لَسَاحِرٌ عَل۪يمٌۙ ﴿١٠٩﴾ يُر۪يدُ اَنْ يُخْرِجَكُمْ مِنْ اَرْضِكُمْۚ
فَمَاذَا تَاْمُرُونَ ﴿١١٠﴾ قَالُٓوا اَرْجِهْ وَاَخَاهُ وَاَرْسِلْ فِي الْمَدَٓائِنِ
حَاشِر۪ينَۙ ﴿١١١﴾ يَاْتُوكَ بِكُلِّ سَاحِرٍ عَل۪يمٍ ﴿١١٢﴾ وَجَٓاءَ السَّحَرَةُ
فِرْعَوْنَ قَالُٓوا اِنَّ لَنَا لَاَجْرًا اِنْ كُنَّا نَحْنُ الْغَالِب۪ينَ ﴿١١٣﴾
قَالَ نَعَمْ وَاِنَّكُمْ لَمِنَ الْمُقَرَّب۪ينَ ﴿١١٤﴾ قَالُوا يَا مُوسٰٓى اِمَّٓا اَنْ تُلْقِيَ
وَاِمَّٓا اَنْ نَكُونَ نَحْنُ الْمُلْق۪ينَ ﴿١١٥﴾ قَالَ اَلْقُواۚ فَلَمَّٓا اَلْقَوْا
سَحَرُٓوا اَعْيُنَ النَّاسِ وَاسْتَرْهَبُوهُمْ وَجَٓاؤُ۫ بِسِحْرٍ عَظ۪يمٍ ﴿١١٦﴾
وَاَوْحَيْنَٓا اِلٰى مُوسٰٓى اَنْ اَلْقِ عَصَاكَۚ فَاِذَا هِيَ تَلْقَفُ
مَا يَاْفِكُونَۚ ﴿١١٧﴾ فَوَقَعَ الْحَقُّ وَبَطَلَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَۚ ﴿١١٨﴾ فَغُلِبُوا
هُنَالِكَ وَانْقَلَبُوا صَاغِر۪ينَۚ ﴿١١٩﴾ وَاُلْقِيَ السَّحَرَةُ سَاجِد۪ينَۚ ﴿١٢٠﴾

**105.** (Gotibû:) "Heqê/deynê li ser min e ku ez der barê Allah de ji rastîyê pê ve tiştekî din nebêjim. Bêguman ez ji we re ji Rabbê we bi mucîzeyên vikîvekirî hatim. Êdî Benî Îsraîl bi min re bişîne."
**106.** (Firewn) got: "Eger bi rastî tu bi mucîzeyek/bi ayetek hatibî û tu di gotina xwe de rastgo bî, de heydê wê bîne (em bibînin)."
**107.** (Li ser vê) Mûsa gopalê xwe avêt. (Ku çi bibîne!) Ji nîşka ve bû ejdeha/marekî mezin.
**108.** Û destê xwe (ji paşila xwe) derxist. (Ku çi bibîne!) Ji nîşka ve (ew) ji bo yên mêze dikir bû (destekî) sipspî/çilsipî.
**109.** (Li dêla vê de) çend giregirên ji qewmê Firewn gotibûn: "Bêguman ev sêhrbazekî zana/hosta ye."
**110.** (Firewn got:) "(Bi vê sêhra xwe) dixwaze ku we ji warê we bajo/derxîne. Hûn çi dibêjin?"
(Firewnên her dewrê dema li dij dawa tewhîdê nikarin tiştekî bibêjin êdî dest bi wêjeya/edebîyata gel û welat dikin. Vegotinên weke "Welat parve dikin!" "We ji war û welatê we bajon/derxînin!" li ser zimanê wan gunehkar û mucrîmên ku li hember daweta tewhîdê peyveke wan a gotinê tune û kibra wan jî ji îcabeta tewhîdê re dibe asteng hevokên wan ên hevpar in.)
**111.** (Giregiran) gotin: "(Cezayê ku tu bidî) wî û birayê wî bide paş. Û ji bajaran re jî civînkaran bişînin."
**112.** "(Bila) sêhrbâzên zana/hosta bı tevahî (bicivînin û) ji te re bînin."
**113.** Sêhrbazan tevde hatin cem Firewn (û gotin): "Eger em bi serkevin êdî tu yê xelatekî (baş) bidî me, ne wisan?"
**114.** (Fîrewn got:) "Erê, bêguman (eger hûn ser bikevin) hûn ê bibin ji (zilamên gûzîde) yên nêzîkî min."
(Pergalên Firewnî, herûdaîm rûmeta însanan dişkênin û wan dikin girêdayîyê mal û meqaman. Bi propogandayên taybetî û bi destheqên têrbaş hin mewqî û meqam li ber çavên însanan meqbûl û muteber nîşan didin. Her wiha dibin sebep ku ew mirov di sefên Firewnan de cih bigirin û ji bo vê jî çi qas rûmetên mirovahîyê hene hemûyan binpê bikin. Ev, encamekî tabiîye ku di dirêjahîya salan de bi kampanyayên/helmetên bîrewer pêk hatîye. Îro navê destheqê bûye meaş û nêzbûn jî bi dîplomeyan û unwanên fermî guherîye. Ew ên ku bi van her du wasiteyan wek dîl/wek êsîr tenê girtin; tehammûla wan bi dawet û teblîxa dawetvanên tewhîdê tune û naxwazin vê dawetê fêm bikin. Û li ser navê Firewn û di sefê wî de bikeftûleft/bidijwarî têkoşin didin/têdikoşin.)
**115.** (Sêhrbazan) gotibûn: "Ya Mûsa! Tu yê pêşî bavêjî an em dest pê bikin. (Çi dibêjî?)"
**116.** (Mûsa ji wan re) got: "(Hûn) dest pê bikin." Dema (halet û amrazên xwe) avêtin, sêhr li çavê însanan kirin û wan bi erjengê/bi dehşetê xistin û sêhreke mezin li holê danîn.
**117.** Me ji Mûsa re wehîy kir û got: "Tu jî gopalê xwe bavêje." (Ku ew çi bibînin!) Ew, tiştên ku wan sêhrbazan lihevanîne bitevahî dadiqurtîne.
**118.** Êdî heqîqet derkete holê û karê (sêhrbazîya) ku wan dikir, pûç bû, çû.
**119.** Li wir derê têk çûn û bi kêmketin vegerîyan.
**120.** Ew sêhrbaz (li hember tiştên ku dîtin) çûn secdê.

قَالُوٓا اٰمَنَّا بِرَبِّ الْعَالَمٖينَۙ ﴿١٢١﴾ رَبِّ مُوسٰى وَهٰرُونَ ﴿١٢٢﴾ قَالَ
فِرْعَوْنُ اٰمَنْتُمْ بِهٖ قَبْلَ اَنْ اٰذَنَ لَكُمْۚ اِنَّ هٰذَا لَمَكْرٌ
مَكَرْتُمُوهُ فِي الْمَدٖينَةِ لِتُخْرِجُوا مِنْهَٓا اَهْلَهَاۚ فَسَوْفَ
تَعْلَمُونَ ﴿١٢٣﴾ لَاُقَطِّعَنَّ اَيْدِيَكُمْ وَاَرْجُلَكُمْ مِنْ خِلَافٍ ثُمَّ
لَاُصَلِّبَنَّكُمْ اَجْمَعٖينَ ﴿١٢٤﴾ قَالُوٓا اِنَّٓا اِلٰى رَبِّنَا مُنْقَلِبُونَۚ ﴿١٢٥﴾
وَمَا تَنْقِمُ مِنَّٓا اِلَّٓا اَنْ اٰمَنَّا بِاٰيَاتِ رَبِّنَا لَمَّا جَٓاءَتْنَاۜ رَبَّنَٓا
اَفْرِغْ عَلَيْنَا صَبْرًا وَتَوَفَّنَا مُسْلِمٖينَ ﴿١٢٦﴾ وَقَالَ الْمَلَاُ مِنْ قَوْمِ
فِرْعَوْنَ اَتَذَرُ مُوسٰى وَقَوْمَهُ لِيُفْسِدُوا فِي الْاَرْضِ وَيَذَرَكَ
وَاٰلِهَتَكَۜ قَالَ سَنُقَتِّلُ اَبْنَٓاءَهُمْ وَنَسْتَحْيٖ نِسَٓاءَهُمْۚ وَاِنَّا فَوْقَهُمْ
قَاهِرُونَ ﴿١٢٧﴾ قَالَ مُوسٰى لِقَوْمِهِ اسْتَعٖينُوا بِاللّٰهِ وَاصْبِرُواۚ
اِنَّ الْاَرْضَ لِلّٰهِۙ يُورِثُهَا مَنْ يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِهٖۜ وَالْعَاقِبَةُ لِلْمُتَّقٖينَ ﴿١٢٨﴾
قَالُوٓا اُو۫ذٖينَا مِنْ قَبْلِ اَنْ تَأْتِيَنَا وَمِنْ بَعْدِ مَا جِئْتَنَاۜ قَالَ
عَسٰى رَبُّكُمْ اَنْ يُهْلِكَ عَدُوَّكُمْ وَيَسْتَخْلِفَكُمْ
فِي الْاَرْضِ فَيَنْظُرَ كَيْفَ تَعْمَلُونَ ﴿١٢٩﴾ وَلَقَدْ اَخَذْنَٓا
اٰلَ فِرْعَوْنَ بِالسِّنٖينَ وَنَقْصٍ مِنَ الثَّمَرَاتِ لَعَلَّهُمْ يَذَّكَّرُونَ ﴿١٣٠﴾

**121.** Gotibûn: "Me îmân bi (Allahê) Rabbê aleman anî."

**122.** Bi wî (Allahê ku) Rabbê Mûsa û Hârûn e."

**123.** Firewn got: "Hêj min destûr nedayî, we îmân pê anî ha? Bêguman ev dafik/fend e, ji bo ku ehlê vî bajarî ji vir derxînin we (bi Mûsa re) ev kemîn danîye. Lê belê (wê çi bê serê we) hûn ê pir nêz de bibînin/fêm bikin.

(Ev ayeta hanê du têgihîna/zehnîyeta Firewnan a neguhêrbar nîşan dide. Hemû Firewn dixwazin ku (îman jî tê de) di qada jiyanê de her tiştê tabiê destûra wan be. Gel jî bi qasî ku Firewnê wan destûrê didin wê bikaribin bawerî bînin û li gorî wan Firewnan kîjan dîn û îdeolojî meqbûl be enceq bikaribin wana ji bo xwe bipejirînin. Taybetîyeke hevpar ya Firewnan yek jî; her kî li der dora wan bicivin û tabiê wan bibin ewana kesên herî welatparêz û neteweperwer û hêja û bi rûmet in. Kesên îtaetê li wan nekin û nebin tabiê wan jî; li cem wan wek neyarê welat û millet in û ew di heman demê de kemînker û xaîn in. Welew ku ev kes hetanî duh ji mirovên nêzî wan û zilamên wan ên gûzîde bin jî rewş ev e.)

**124.** "Bêguman ez ê dest û pîyên we çeprastî jêbikim û paşê ez ê we tevde daleqînim."

**125.** Gotibûn: "Bêguman em ê vegerin cem bi Rabbê xwe ve."

**126.** "Ji ber ku ayetên Rabbê me ji me re hatîye û me jî îmân bi wan anîye tu ji me heyf distînî. Rabbê me! Tu di ser me de sebrê bibarîne û me wek muslîm/ew evdên ku şirkê terk kirine û bi tewhîdê berê xwe dane Allah, rohê me bistîne."

**127.** Giregirên ji qewmê Firewn gotibûn: "Qey ji bo ku li ser rûyê erdê berhevdanîyê bikin û dev ji te û îlâhên te berdin tu Mûsa û qewmê wî serbest dihêlî?" (Firewn ji bo wan teskîn bike) got: "Em ê zarokên wan ên kurîn bikujin û jinên wan sax bihêlin. Bi rastî em li ser wan xwedî hêzeke qehirker in."

**128.** Mûsa ji qewmê xwe re (wiha) got: "Ji Allah alîkarîyê bixwazin û sebir bikin. Bêguman ser rûyê erdê/dinya aîdê Allah e. Ew ji evdên xwe ji bo kî bixwaze dide wî/dike waris. Aqûbet/dawîya xweş yê Mutteqîyan e."

**129.** (Qewmê wî jê re) gotibû: "Berîya ku tu werî jî û piştî ku tu hatî jî me her ezîyet dît." (Mûsa) got: "(Wisan nefikirin!) Hêvî heye ku Rabbê we dijminê we helak bike û we li ser rûyê erdê bike xelîfe (di şûna wan de we bike rêveber). Paşê wê çavnêrîya we bike ka hûn karên çawan dikin."

**130.** Sond be! Ji bo ku şîretê bigirin û bifikirin me Firewn û malbata wî ber bi xelayê û kêmkirina fêkîyan ve xist.

فَاِذَا جَٓاءَتْهُمُ الْحَسَنَةُ قَالُوا لَنَا هٰذِهٖۚ وَاِنْ تُصِبْهُمْ سَيِّئَةٌ
يَطَّيَّرُوا بِمُوسٰى وَمَنْ مَعَهُۜ اَلَٓا اِنَّمَا طَٓائِرُهُمْ عِنْدَ اللّٰهِ وَلٰكِنَّ
اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٣١﴾ وَقَالُوا مَهْمَا تَأْتِنَا بِهٖ مِنْ اٰيَةٍ
لِتَسْحَرَنَا بِهَاۙ فَمَا نَحْنُ لَكَ بِمُؤْمِنِينَ ﴿١٣٢﴾ فَاَرْسَلْنَا
عَلَيْهِمُ الطُّوفَانَ وَالْجَرَادَ وَالْقُمَّلَ وَالضَّفَادِعَ وَالدَّمَ اٰيَاتٍ
مُفَصَّلَاتٍ فَاسْتَكْبَرُوا وَكَانُوا قَوْمًا مُجْرِمِينَ ﴿١٣٣﴾
وَلَمَّا وَقَعَ عَلَيْهِمُ الرِّجْزُ قَالُوا يَا مُوسَى ادْعُ لَنَا رَبَّكَ
بِمَا عَهِدَ عِنْدَكَۚ لَئِنْ كَشَفْتَ عَنَّا الرِّجْزَ لَنُؤْمِنَنَّ لَكَ
وَلَنُرْسِلَنَّ مَعَكَ بَنٖٓي اِسْرَٓائِلَۚ ﴿١٣٤﴾ فَلَمَّا كَشَفْنَا عَنْهُمُ
الرِّجْزَ اِلٰٓى اَجَلٍ هُمْ بَالِغُوهُ اِذَا هُمْ يَنْكُثُونَ ﴿١٣٥﴾ فَانْتَقَمْنَا
مِنْهُمْ فَاَغْرَقْنَاهُمْ فِي الْيَمِّ بِاَنَّهُمْ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَكَانُوا
عَنْهَا غَافِلِينَ ﴿١٣٦﴾ وَاَوْرَثْنَا الْقَوْمَ الَّذِينَ كَانُوا يُسْتَضْعَفُونَ
مَشَارِقَ الْاَرْضِ وَمَغَارِبَهَا الَّتِي بَارَكْنَا فِيهَاۜ وَتَمَّتْ كَلِمَتُ
رَبِّكَ الْحُسْنٰى عَلٰى بَنٖٓي اِسْرَٓائِلَ بِمَا صَبَرُواۜ وَدَمَّرْنَا
مَا كَانَ يَصْنَعُ فِرْعَوْنُ وَقَوْمُهُ وَمَا كَانُوا يَعْرِشُونَ ﴿١٣٧﴾

**131.** Dema ku qencîyek bi ser wan de bihata (wiha) digotin: "Ev heqê me ye." Lê dema mûsîbetek dihat serê wan (wiha) digotin: "Ev bêoxirîya Mûsa û yên pê re ne. Baldar bin/Dîqat bikin! Ew tiştên bêoxirî (hemû musîbetên wisan dinavînin û dihesibînin) ji îndallah e. Lê pirên wan bi vêya nizanin."

**132.** Gotibûn: "Ji bo ku tu sêhr/efsûn li me bikî, tu ji me re çi ayetê/çi mûcîzeyê tînî bîne, em dîsa bi te îmân naynin."

**133.** (Li ser vê yekê) me jî di ser wan de mucîzeyên/ayetên cur bi cur; weke tofan û kulî û mêşûmor/haşerat (sipih û kêç û kêzik) û beq û xwîn şand. Lê dîsa quretî kirin û bûn civakeke gunehkarên mucrîm.

**134.** Dema ku ezab bi ser wan de girt, gotibûn: "Ya Mûsa, tu bi xatirê wê ehda (ku Allah) daye te, ji bo me dûa ji Rabbê xwe re bike. Eger vê ezabê ji ser me rabikî, sond be em ê îmân bi te bînin û em ê Benî Îsraîl bi te re bişînin!"

**135.** (Ji bo ceribandinê ka wê girêdayîyê soza xwe bimînin an na) çi wextê, hetanî demekî me ew ezab ji ser wan rakir (lê tu çi bibînî), ew ji soza xwe vegerîyane jî.

**136.** (Li ser vê yekê) me heyf ji wan sitend. Ji ber ku ayetên me derewandin û li hember wan xafil bûn me ew di avê de xeniqand.

**137.** Ew qewmê mustezaf jî li şerq û li xerbê wê erdê ku bi bereketê xemilandî bû me kire waris. Ji ber ku sebir kiribûn Rabbê te weada xweşik ku dabû Benî Îsraîl, pêk hat. Tiştên (qesr û qonaxên) ku Firewn û qewmê wî çêkiribûn û bilind kiribûn jî me serûbinî hev kir.

وَجَاوَزْنَا بِبَنٖٓى اِسْرَٓائٖلَ الْبَحْرَ فَاَتَوْا عَلٰى قَوْمٍ يَعْكُفُونَ
عَلٰٓى اَصْنَامٍ لَهُمْۚ قَالُوا يَا مُوسَى اجْعَلْ لَنَٓا اِلٰهًا كَمَا
لَهُمْ اٰلِهَةٌۜ قَالَ اِنَّكُمْ قَوْمٌ تَجْهَلُونَ ﴿١٣٨﴾ اِنَّ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ مُتَبَّرٌ
مَا هُمْ فٖيهِ وَبَاطِلٌ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١٣٩﴾ قَالَ اَغَيْرَ اللّٰهِ
اَبْغٖيكُمْ اِلٰهًا وَهُوَ فَضَّلَكُمْ عَلَى الْعَالَمٖينَ ﴿١٤٠﴾
وَاِذْ اَنْجَيْنَاكُمْ مِنْ اٰلِ فِرْعَوْنَ يَسُومُونَكُمْ سُٓوءَ
الْعَذَابِۚ يُقَتِّلُونَ اَبْنَٓاءَكُمْ وَيَسْتَحْيُونَ نِسَٓاءَكُمْۜ
وَفٖى ذٰلِكُمْ بَلَٓاءٌ مِنْ رَبِّكُمْ عَظٖيمٌ ﴿١٤١﴾ وَوَاعَدْنَا مُوسٰى
ثَلٰثٖينَ لَيْلَةً وَاَتْمَمْنَاهَا بِعَشْرٍ فَتَمَّ مٖيقَاتُ رَبِّهٖٓ اَرْبَعٖينَ لَيْلَةًۚ
وَقَالَ مُوسٰى لِاَخٖيهِ هٰرُونَ اخْلُفْنٖى فٖى قَوْمٖى وَاَصْلِحْ وَلَا تَتَّبِعْ
سَبٖيلَ الْمُفْسِدٖينَ ﴿١٤٢﴾ وَلَمَّا جَٓاءَ مُوسٰى لِمٖيقَاتِنَا وَكَلَّمَهُ
رَبُّهُۙ قَالَ رَبِّ اَرِنٖٓى اَنْظُرْ اِلَيْكَۜ قَالَ لَنْ تَرٰينٖى وَلٰكِنِ
انْظُرْ اِلَى الْجَبَلِ فَاِنِ اسْتَقَرَّ مَكَانَهُ فَسَوْفَ تَرٰينٖىۚ
فَلَمَّا تَجَلّٰى رَبُّهُ لِلْجَبَلِ جَعَلَهُ دَكًّا وَخَرَّ مُوسٰى صَعِقًاۚ فَلَمَّٓا
اَفَاقَ قَالَ سُبْحَانَكَ تُبْتُ اِلَيْكَ وَاَنَا اَوَّلُ الْمُؤْمِنٖينَ ﴿١٤٣﴾

**138.** Me Benî Îsraîl ji behrê derbas kir. Êdî gihîştine cem qewmekî ku ew bi parastina pûtên xwe meşxul bûn. (Gotin:) “Ya Mûsa! Çawa ku îlâhê wan heye, tu jî ji me re weke îlâhê wan îlâhekî çêke.” (Mûsa) got: “Bêşik hûn qewmekî (wisan in ku) cahiltîyê dikin.”

**139.** Rewşa wan (pûtperestên hûn dixwazin xwe bişibînin wan, rewşeke wiha ye ku) mehkûmê tunebûnê ye. Kar û kirinên wan (li îndallah) pûç û betal e.

**140.** Gotibû: “Digel ku wî (Allah) hûn li ser aleman re girtîye, hêj ez ê ji we re ji Allah pê ve li îlâhekî din bigerim?”

**141.** (Bi bîr bînin!) Me hûn ji malbata Firewn xelas kiribûn. Wan ezabekî pir mezin li we dikirin. Zilamên we dikuştin û jinên we sax dihiştin. Di vêya de ji we re ji Rabbê we îmtîhanek mezin hebû.




**142.** Me bi Mûsa re ji bo sî şevan peyman danî. Ji xeynî vê me deh rojên din jî lê zêde kir. Bi vî awayî wextê Rabbê te kifş kiribû bi çil şevî temam bû. Mûsa ji birayê xwe Hârûn re gotibû: “Di nava qewmê min de tu têkeve şûna min. Islah bike û nede pey rêya mufsîdan.”

**143.** Mûsa, hat cihê kifşkirî û dema Rabbê wî pê re axivî/peyivî (wiha) got: “Rabbê min! Xwe nîşanî min bide, ez te bibînim.” (Allah) got: “Tu nikarî min bibînî. Lê belê li vî çiyayî binêre. Eger ew di cihê xwe de bimîne tu yê min bibînî.” Dema Rabbê wî tecellîyê çiya kir ew parçe parçe bû û Mûsa xeriqî/jidilborî û tera bû. Dema hate ser hişê xwe wiha got: “Ez te (ji hemû kêmasîyan) tenzîh dikim. Ez ji te re tobe dikim û ez pêşîkê mumînan im.”

قَالَ يَا مُوسٰٓى اِنّ۪ي اصْطَفَيْتُكَ عَلَى النَّاسِ بِرِسَالَاتٖي
وَبِكَلَامٖيۘ فَخُذْ مَٓا اٰتَيْتُكَ وَكُنْ مِنَ الشَّاكِر۪ينَ ﴿١٤٤﴾
وَكَتَبْنَا لَهُ فِي الْاَلْوَاحِ مِنْ كُلِّ شَيْءٍ مَوْعِظَةً
وَتَفْص۪يلًا لِكُلِّ شَيْءٍۚ فَخُذْهَا بِقُوَّةٍ وَأْمُرْ قَوْمَكَ
يَأْخُذُوا بِاَحْسَنِهَاۜ سَاُر۪يكُمْ دَارَ الْفَاسِق۪ينَ ﴿١٤٥﴾ سَاَصْرِفُ
عَنْ اٰيَاتِيَ الَّذ۪ينَ يَتَكَبَّرُونَ فِي الْاَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّۜ
وَاِنْ يَرَوْا كُلَّ اٰيَةٍ لَا يُؤْمِنُوا بِهَاۚ وَاِنْ يَرَوْا سَب۪يلَ الرُّشْدِ
لَا يَتَّخِذُوهُ سَب۪يلًاۚ وَاِنْ يَرَوْا سَب۪يلَ الْغَيِّ يَتَّخِذُوهُ سَب۪يلًاۜ
ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَكَانُوا عَنْهَا غَافِل۪ينَ ﴿١٤٦﴾
وَالَّذ۪ينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَلِقَٓاءِ الْاٰخِرَةِ حَبِطَتْ اَعْمَالُهُمْۜ
هَلْ يُجْزَوْنَ اِلَّا مَا كَانُوا يَعْمَلُونَۜ ﴿١٤٧﴾ وَاتَّخَذَ قَوْمُ مُوسٰى
مِنْ بَعْدِه۪ مِنْ حُلِيِّهِمْ عِجْلًا جَسَدًا لَهُ خُوَارٌۜ اَلَمْ يَرَوْا اَنَّهُ
لَا يُكَلِّمُهُمْ وَلَا يَهْد۪يهِمْ سَب۪يلًاۢ اِتَّخَذُوهُ وَكَانُوا ظَالِم۪ينَ ﴿١٤٨﴾
وَلَمَّا سُقِطَ ف۪ٓي اَيْد۪يهِمْ وَرَاَوْا اَنَّهُمْ قَدْ ضَلُّواۙ قَالُوا لَئِنْ لَمْ يَرْحَمْنَا
رَبُّنَا وَيَغْفِرْ لَنَا لَنَكُونَنَّ مِنَ الْخَاسِر۪ينَ ﴿١٤٩﴾

**144.** (Allah jê re) got: "Ya Mûsa! Bi rîsaleta ku min daye te û bi kelama (axaftina) xwe min tu di nav însanan de serdest/bijare girtîye. Tiştê ku min daye te bigire û bibe ji şikurdaran.

**145.** Me ji wî re di wan lewheyan de ji şîret û der barê her tiştî de agahîyên mufessel nivîsand. "Bi quwet, xwe bi van bigire û ji qewmê xwe re jî emir bike bila bi xweşikayî xwe pê bigirin. Ew fasiqên (ku hatibûn cezakirin) warê wan (ka ketîye çi halî) ez ê nîşanî we bidim."

**146.** Ew kesên li ser rûyê erdê bi neheqî quretî û pozbilindî dikirin ez ê (wan) ji ayetên xwe vegerînim. (Wê bêpêwend/bêeleqe/guhnedêr bimînin û ew seh bikin jî fêm nakin.) Ew, hemû ayetan bibînin jî îmân naynin. Ew rêya rûşd/rast/avakirinê bibînin jî wê ji xwe re nakin rê (û pê de naçin). Lê ew rêya çewtîyê/şaşîtîyê/xerabîyê bibînin (di heman demê de dipejirînin û) ji xwe re wek rê digirin. Ev, ji ber ku ayetên me derewandibûn û ji wan xafil mabûn e.

(Ji bo sebebên ji fêmkirina heqîyê re dibin asteng bnr. 6/En'am, 25.)

**147.** Ew ên ayetên me û liqayî hatina axîretê derewandine; amelên wan pûç û betal bûye. (Qey li hêvîya çi bûn?) Ma wê ji amelên xwe pê ve bi tiştekî din bihatana cezakirin?

**148.** Qewmê Mûsa di pişt wî de ji zêr û zînetan peykerê golikekî çêkirin (ji ber hawa ya ku distand) orîn pê diket û ji xwe re kirin îlâh. Ma qey ewana nedidît ku ew (golik) bi wan re napeyive û qet rêya hîdayetê jî nîşanî wan nade? Ew ji xwe re kirin (îlâh) û bûn ji zaliman (bi îlâh girtina golikê bûn zalim/muşrîk).

**149.** Dema (li serê xwe xistin û) poşman bibûn û fêm kiribûn ku di xerifîyê/di rêşaşîyê de ne, gotibûn: "Eger Rabbê me li me neyê rahme û me efû neke, bi rastî em ê bibin ji zîyandaran."

وَلَمَّا رَجَعَ مُوسٰٓى اِلٰى قَوْمِه۪ غَضْبَانَ اَسِفًاۙ قَالَ بِئْسَمَا خَلَفْتُمُون۪ي
مِنْ بَعْد۪يۚ اَعَجِلْتُمْ اَمْرَ رَبِّكُمْۚ وَاَلْقَى الْاَلْوَاحَ وَاَخَذَ بِرَأْسِ
اَخ۪يهِ يَجُرُّهُٓ اِلَيْهِۜ قَالَ ابْنَ اُمَّ اِنَّ الْقَوْمَ اسْتَضْعَفُون۪ي
وَكَادُوا يَقْتُلُونَن۪يۘ فَلَا تُشْمِتْ بِيَ الْاَعْدَٓاءَ وَلَا تَجْعَلْن۪ي
مَعَ الْقَوْمِ الظَّالِم۪ينَ ﴿١٥٠﴾ قَالَ رَبِّ اغْفِرْ ل۪ي وَلِاَخ۪ي وَاَدْخِلْنَا
ف۪ي رَحْمَتِكَۘ وَاَنْتَ اَرْحَمُ الرَّاحِم۪ينَۚ ﴿١٥١﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ اتَّخَذُوا
الْعِجْلَ سَيَنَالُهُمْ غَضَبٌ مِنْ رَبِّهِمْ وَذِلَّةٌ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۜ
وَكَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُفْتَر۪ينَ ﴿١٥٢﴾ وَالَّذ۪ينَ عَمِلُوا السَّيِّـَٔاتِ ثُمَّ تَابُوا
مِنْ بَعْدِهَا وَاٰمَنُواۘ اِنَّ رَبَّكَ مِنْ بَعْدِهَا لَغَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿١٥٣﴾
وَلَمَّا سَكَتَ عَنْ مُوسَى الْغَضَبُ اَخَذَ الْاَلْوَاحَۚ وَف۪ي نُسْخَتِهَا
هُدًى وَرَحْمَةٌ لِلَّذ۪ينَ هُمْ لِرَبِّهِمْ يَرْهَبُونَ ﴿١٥٤﴾ وَاخْتَارَ مُوسٰى
قَوْمَهُ سَبْع۪ينَ رَجُلًا لِم۪يقَاتِنَاۚ فَلَمَّٓا اَخَذَتْهُمُ الرَّجْفَةُ قَالَ رَبِّ
لَوْ شِئْتَ اَهْلَكْتَهُمْ مِنْ قَبْلُ وَاِيَّايَۜ اَتُهْلِكُنَا بِمَا فَعَلَ
السُّفَهَٓاءُ مِنَّاۚ اِنْ هِيَ اِلَّا فِتْنَتُكَۜ تُضِلُّ بِهَا مَنْ تَشَٓاءُ وَتَهْد۪ي
مَنْ تَشَٓاءُۜ اَنْتَ وَلِيُّنَا فَاغْفِرْ لَنَا وَارْحَمْنَا وَاَنْتَ خَيْرُ الْغَافِر۪ينَ ﴿١٥٥﴾

**150.** Dema Mûsa bi hêrs û xemgînî vegerîya cem qewmê xwe (ji wan re) gotibû: "We di pey min de çi karekî xerab kiriye? We (ji bo pêkanîna) emrê Rabbê xwe lezand (ne wisa)? Paşê lewheyan avêtibû û bi serê (bi pora) birayê xwe girt û bi xwe ve kişand. (Hârûn) gotibû: "Hê kurê dêya min! (Ne wekî zena te ye!) Vê civakê ez zeîf hiştim û hindik mabû ku ez bikuştama. Lê tu kêfa neyaran bi min neyne û min û vê civaka zalim yek negire."

**151.** (Li ser vê) Mûsa gotibû: "Rabbê min! Min û birayê min efû bike û me têxe nava rahmeta xwe. Bi rastî Rahîmê Rahîman her tu yî."

**152.** Bêguman ew ê golik ji xwe re (bi îlâhtî) hebandine hene, wê ji Rabbê wan xezebek û di jiyana dinyayê de jî zilletek bigihîje wan. Em (ew ên bi şirîk çêkirinê ji Allah re) bêbextîyê dikin ha wiha didin ezabê!

**153.** Ew ên amelên xerab kirine û piştre tobe kirine û îmân anîne jî; bêguman Rabbê te piştî vêya (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**154.** Dema hêrsa Mûsa danî rahişte/hilgirte wan lewha (yên ku avêtibû erdê). Di nusxeyekê wê de: "Ji bo yên ji Rabbê xwe ditirsin hîdayet û rahmet heye." (nivîsî bû.)

**155.** Ji bo wexta ku me danîbû Mûsa ji qewmê xwe heftê zilam hilbijartibû. (Ji bo vê gotina wan "Heta em Allah bi eşkerehî nebînin em îmân bi te naynin" wek ceza) erdhêja dijwar bi wan girt, (Mûsa) got: "Rabbê min! Eger te bixwesta tu yê min û wan hêj berê de helak bikirana. Ma tu yê a niha ji ber çend heb sefîhên/kêmaqilên di nava me de, tu yê me helak bikî? Lê ev bûyer/hadîse ji îmtîhana te pê ve ne tiştekî din e. Bi vê tu kî bixwazî dixerifînî û kî jî bixwazî digihînî hîdayetê. Dostê me/Welîyê me tu yî. Êdî me efû bike û rahme li me bike. Tu bixêrtirê Xafûran/Efûkaran î."

وَاكْتُبْ لَنَا ف۪ي هٰذِهِ الدُّنْيَا حَسَنَةً وَفِي الْاٰخِرَةِ اِنَّا هُدْنَٓا
اِلَيْكَۜ قَالَ عَذَاب۪ٓي اُص۪يبُ بِه۪ مَنْ اَشَٓاءُۚ وَرَحْمَت۪ي وَسِعَتْ
كُلَّ شَيْءٍۜ فَسَاَكْتُبُهَا لِلَّذ۪ينَ يَتَّقُونَ وَيُؤْتُونَ
الزَّكٰوةَ وَالَّذ۪ينَ هُمْ بِاٰيَاتِنَا يُؤْمِنُونَۚ ﴿١٥٦﴾ اَلَّذ۪ينَ
يَتَّبِعُونَ الرَّسُولَ النَّبِيَّ الْاُمِّيَّ الَّذ۪ي يَجِدُونَهُ مَكْتُوبًا
عِنْدَهُمْ فِي التَّوْرٰيةِ وَالْاِنْج۪يلِ يَأْمُرُهُمْ بِالْمَعْرُوفِ وَيَنْهٰيهُمْ
عَنِ الْمُنْكَرِ وَيُحِلُّ لَهُمُ الطَّيِّبَاتِ وَيُحَرِّمُ عَلَيْهِمُ
الْخَبَٓائِثَ وَيَضَعُ عَنْهُمْ اِصْرَهُمْ وَالْاَغْلَالَ الَّت۪ي كَانَتْ
عَلَيْهِمْۜ فَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا بِه۪ وَعَزَّرُوهُ وَنَصَرُوهُ وَاتَّبَعُوا
النُّورَ الَّذ۪ٓي اُنْزِلَ مَعَهُٓۙ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿١٥٧﴾
قُلْ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنّ۪ي رَسُولُ اللّٰهِ اِلَيْكُمْ جَم۪يعًا الَّذ۪ي
لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۚ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ يُحْي۪ وَيُم۪يتُۖ
فَاٰمِنُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِهِ النَّبِيِّ الْاُمِّيِّ الَّذ۪ي يُؤْمِنُ بِاللّٰهِ
وَكَلِمَاتِه۪ وَاتَّبِعُوهُ لَعَلَّكُمْ تَهْتَدُونَ ﴿١٥٨﴾ وَمِنْ قَوْمِ
مُوسٰٓى اُمَّةٌ يَهْدُونَ بِالْحَقِّ وَبِه۪ يَعْدِلُونَ ﴿١٥٩﴾

**156.** "Ji me re li vê dinyayê jî û li axîretê jî hasenatê/qencîyê binivîse. Bêguman (bi tobê û bi hêvîya hîdayetê) me berê xwe daye te." (Allah) got: "Ez ezabê xwe ji kî re daxwaz bikim tînim serê wî. Lê rahmeta min her tiştî dorpêç kiriye. Ez ê wê (rahmetê) ji ew ên xwe diparêzin û zekâtê didin û bi ayetên me îmân tînin re binivîsim."

**157.** "Ew in ku; didin pey wî Rasûl Nebîyê ummî ku hatina wî di Tewrat û Încîla li cem wan de nivîsandîye. Ew (pêxember) emrê qencîyê dike û ji xerabîyê jî men dike. Tiştên paqij helal û tiştên mirdar jî heram dike. Barên wan ên giran û qeyd û zincîrên wan radike. Ew ên bi wî îmân anîne û piştgirîya wî kirine û yên hurmet û rûmet dane wî û yên dane pey nûra (Qur'ana) ku jê re nazil bûye hene... Ha ew ên xelas bûne her ew bixe ne."

**158.** Bibêje: "Gelî însanan! Bêguman ez Rasûlê Allah im ku ji we hemûyan re hatime (şandin). Ew (Allahê ku) serwerîya/hakimîyeta erd û esmanan aîdê wî ye. Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. Ew vedijîne/sax dike û dimirîne. Werin, bi Allah û bi Nebîyê ummî ku Rasûlê wî ye îmân bînin. Ew (Nebî) îmân bi Allah û bi kelîmeyên wî anîye. Bidin pey wî/tabiê wî bibin ku hûn bigihîjin hîdayetê."

**159.** Civatek ji qewmê Mûsa heye ku bi heqî rêya rast dîtine û bi heqîyê hukim dikin.

وَقَطَّعْنَاهُمُ اثْنَتَيْ عَشْرَةَ اَسْبَاطًا اُمَمًاۜ وَاَوْحَيْنَٓا
اِلٰى مُوسٰٓى اِذِ اسْتَسْقٰيهُ قَوْمُهُٓ اَنِ اضْرِبْ بِعَصَاكَ
الْحَجَرَۚ فَانْبَجَسَتْ مِنْهُ اثْنَتَا عَشْرَةَ عَيْنًاۜ قَدْ عَلِمَ
كُلُّ اُنَاسٍ مَشْرَبَهُمْۜ وَظَلَّلْنَا عَلَيْهِمُ الْغَمَامَ وَاَنْزَلْنَا
عَلَيْهِمُ الْمَنَّ وَالسَّلْوٰىۜ كُلُوا مِنْ طَيِّبَاتِ
مَا رَزَقْنَاكُمْۜ وَمَا ظَلَمُونَا وَلٰكِنْ كَانُٓوا اَنْفُسَهُمْ
يَظْلِمُونَ ﴿١٦٠﴾ وَاِذْ قِيلَ لَهُمُ اسْكُنُوا هٰذِهِ الْقَرْيَةَ
وَكُلُوا مِنْهَا حَيْثُ شِئْتُمْ وَقُولُوا حِطَّةٌ وَادْخُلُوا
الْبَابَ سُجَّدًا نَغْفِرْ لَكُمْ خَطِيٓـَٔاتِكُمْۜ سَنَزِيدُ
الْمُحْسِنِينَ ﴿١٦١﴾ فَبَدَّلَ الَّذِينَ ظَلَمُوا مِنْهُمْ قَوْلًا
غَيْرَ الَّذٖى قِيلَ لَهُمْ فَاَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ رِجْزًا مِنَ السَّمَٓاءِ
بِمَا كَانُوا يَظْلِمُونَ ﴿١٦٢﴾ وَسْـَٔلْهُمْ عَنِ الْقَرْيَةِ الَّتٖى
كَانَتْ حَاضِرَةَ الْبَحْرِۢ اِذْ يَعْدُونَ فِى السَّبْتِ
اِذْ تَأْتٖيهِمْ حٖيتَانُهُمْ يَوْمَ سَبْتِهِمْ شُرَّعًا وَيَوْمَ لَا يَسْبِتُونَۙ
لَا تَأْتٖيهِمْۚ كَذٰلِكَۚ نَبْلُوهُمْ بِمَا كَانُوا يَفْسُقُونَ ﴿١٦٣﴾

**160.** Me ew (Benî Îsraîl) li ser dozdeh êl/eşîr kom bi kom ji hev cihê kir. Dema qewmê wî jê av xwestibûn me ji Mûsa re wehîy kir û got: “Bi gopalê xwe li kevir bixe.” (Dema bi gopalê xwe li kevir xist) jê dozdeh kanî pijiqî/beliqî/dêr bû. Bi vî awayî her qebîle bi cihê vexwarina ava xwe zanîbû. Me di ser wan de bi ewran sîwan çêkiribû û me ji wan re helawa qudretê û goştê qarîtkê/sûsikê daxistibû. (Piştre me ji wan re got:) “Tiştên me we pê riziqandîye ji yên paqij bixwin.” Ewana zilim li me nekirin, lê (ji ber gunehên kiribûn) li nefsa xwe zilim dikirin.

**161.** Ji wan (Benî Îsraîl) re hate gotin: “Di vî bajarî de bi cih bibin û hûn ji ku derê dixwazin ji wê derê bixwin û bibêjin: ‘Hittatun/gunehên me bibexşîne.’ Dema hûn di derî de derbas dibin bi secdekirin derbas bibin ku em jî xetayên we efû bikin. Em ê xelata muhsînan/ew kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin zêde bikin.

**162.** Lê di nav wan de ew ên zilimkar, kelîmeya ku ji wan re hatîye gotin (ew kelîmeya ‘Hittatun’ ku tê ser maneya ‘gunehên me bibexşîne’ bi kelîmeya ku tê ser maneya ‘genim’ yanê bi ‘Hintatun’ re) guherandin. Me jî di muqabilê zilma wan de ji asîmanan ezabek şandibû ser wan.

**163.** Ji wan rewşa wî bajarê ku li perava/li kevîya behrê bû bipirse. Bi bîr bîne ku ewana di roja şemîyê/sebtê de (qedexekirina masîgirtinê binpê kiribûn û) ji hedê xwe borîbûn. Dema ku dibûn tabiê qedexeya roja şemîyê (ne diçûn masîya) masî ji wan re ji her alî ve dihatin. Lê dema qedexeya roja şemîyê binpê dikirin (masî ji wan re) nedihatin. Ji ber ku ji rê derketibûn; me ew a wiha îmtîhan dikirin.

**164.** Dema ku ji wan komekî gotin: "Hûn ji bo çi ji qewmekî wisa re şîretan dikin ku Allah dê wan helak bike an jî wê bi ezabekî dijwar wan bide ezabkirin? (Şîretkaran) gotibûn: "Ji bo ku li cem Rabbê we bibe mazeret û hêvî dibe ku xwe biparêzin".

**165.** Çi wextê şîretên li wan hatine kirin ji bîr kirin, me jî ew ên nehîya ji munkerê/mena ji xerabîyê dikirin, xelas kirin û ji ber fasiqbûna wan me bi ezabekî dijwar bi wan girtibû.

**166.** Dema dev ji tiştên jê hatibûn menkirin bernedabûn; me jî ji wan re gotibû: "Bibin meymûnên çepel/rezîl!"

**167.** Wê gavê Rabbê te (vê heqîqetê) ragihande wan ku heta roja qiyametê hinek kesên ku îşkenceya/tehdehîya herî xerab li wan dike di ser wan de bişîne/muselletê wan bike. Bi rastî cezadayîna Rabbê te pir lezgîn e. Bêguman ew (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**168.** Me ewana li ser rûyê erdê bi rewşa civakan ji hev cihê kirin. Di nav wan de çawa ku kesên qenc hene yên ne wisa ne jî hene. Ji bo (hêvîya ku) vegerin (teqwa û qencîyê) me wan bi qencîyan û bi xerabîyan îmtîhan kirin.

**169.** Di pey wan de hin kesên (ne qenc) ji Kitêbê re bûne waris. Ewana malê dinyayê yên bêqîmet distendin/digirtin û wiha digotin: "Ji xwe (çawa be jî) wê gunehên me bên bexişandin!" (Qaşo/goya digel toba xwe) dema ku malê dinyayê yên bêqîmet ji wan re dihat, dîsa digirtin/distendin. Erê ma di Kitêbê de peyman ji wan nehatibû sitendin ku ew li ser (navê) Allah ji rastîyê pê ve tiştekî din nebêjin? Halbûkî ewana ew kes bûn ku tiştên di Kitêbê de bênavber dixwendin. Ji bo Mutteqîyan warê axîretê bixêrtir e. Ma hûn aqil nagirin?

وَاِذْ قَالَتْ اُمَّةٌ مِنْهُمْ لِمَ تَعِظُونَ قَوْمًاۙ اللّٰهُ مُهْلِكُهُمْ
اَوْ مُعَذِّبُهُمْ عَذَابًا شَدِيدًاۜ قَالُوا مَعْذِرَةً اِلٰى رَبِّكُمْ وَلَعَلَّهُمْ
يَتَّقُونَ ﴿١٦٤﴾ فَلَمَّا نَسُوا مَا ذُكِّرُوا بِهٖٓ اَنْجَيْنَا الَّذِينَ يَنْهَوْنَ
عَنِ السُّٓوءِ وَاَخَذْنَا الَّذِينَ ظَلَمُوا بِعَذَابٍ بَٔيٖسٍ بِمَا كَانُوا
يَفْسُقُونَ ﴿١٦٥﴾ فَلَمَّا عَتَوْا عَنْ مَا نُهُوا عَنْهُ قُلْنَا لَهُمْ كُونُوا
قِرَدَةً خَاسِـِٔينَ ﴿١٦٦﴾ وَاِذْ تَاَذَّنَ رَبُّكَ لَيَبْعَثَنَّ عَلَيْهِمْ اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ
مَنْ يَسُومُهُمْ سُٓوءَ الْعَذَابِۜ اِنَّ رَبَّكَ لَسَرِيعُ الْعِقَابِۚ وَاِنَّهُ
لَغَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿١٦٧﴾ وَقَطَّعْنَاهُمْ فِي الْاَرْضِ اُمَمًاۚ مِنْهُمُ الصَّالِحُونَ
وَمِنْهُمْ دُونَ ذٰلِكَۘ وَبَلَوْنَاهُمْ بِالْحَسَنَاتِ وَالسَّيِّـَٔاتِ لَعَلَّهُمْ
يَرْجِعُونَ ﴿١٦٨﴾ فَخَلَفَ مِنْ بَعْدِهِمْ خَلْفٌ وَرِثُوا الْكِتَابَ
يَاْخُذُونَ عَرَضَ هٰذَا الْاَدْنٰى وَيَقُولُونَ سَيُغْفَرُ لَنَاۚ وَاِنْ يَاْتِهِمْ
عَرَضٌ مِثْلُهُ يَاْخُذُوهُۜ اَلَمْ يُؤْخَذْ عَلَيْهِمْ مِيثَاقُ الْكِتَابِ
اَنْ لَا يَقُولُوا عَلَى اللّٰهِ اِلَّا الْحَقَّ وَدَرَسُوا مَا فِيهِۜ وَالدَّارُ الْاٰخِرَةُ
خَيْرٌ لِلَّذِينَ يَتَّقُونَۜ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿١٦٩﴾ وَالَّذِينَ يُمَسِّكُونَ
بِالْكِتَابِ وَاَقَامُوا الصَّلٰوةَۜ اِنَّا لَا نُضِيعُ اَجْرَ الْمُصْلِحِينَ ﴿١٧٠﴾

**170.** Ew ên (bi her çar lepan) bi Kitêbê girtine û nimêjên xwe rasterast dikin hene! Bêguman em mikafata muslîhan/ehlê salahê winda nakin.

(Di tevahîya Qur'anê de fêm dibe ku qewmê Cihû li hember Kitêbê bûne sê qisim:
1- Qisimek ji wan ummî ne ku ew ji Kitêbê qet tiştek nizanin û hin malumatên ji devan girtî wek Kitêb nas dikin. (2/Baqara, 78)
2- Ew ên ku Kitêbê bênavber dixwînin lê Kitêb texrîf dikin 5/Maîde, 13), ew ên ayetên Kitêbê vedişêrin (3/Âl-î Îmran, 187), ew ên ji bo menfaetekî dinyewî ayetên Kitêbê difroşin (2/Baqara, 79), ew ên ji bo razîkirina rayedaran û n sermîyanê hukmên Kitêbê xwaro maro dikin (7/A'raf, 175-176), ew ên ku çi wextê li îş û xweşa wan tê didin pey Kitêbê lê çi wextê li xweşa wan neyê ji Kitêbê rû dizivirînin (24/Nûr, 47-50).
3- Ew kesên salih ku (bi her çar lepan) bi Kitêbê girtine û hukmên wê pêk tînin (7/A'râf, 170).
Ev her sê qisim jî îdîa dikin ku îmân bi Kitêbê anîne. Allah (ac) îdîaya qismên yekem û duyem diderewîne û bi kufra wan hukim dide. (Bnr.2/Baqara, 79, 85, 101; 3/Âl-î Îmran, 7; 4/Nîsa, 105; 5/Maîde, 43, 44, 68...) Îdîaya qisima sêyemîn dipejirîne û bi mumîntîya wan hukim dike. (Bnr.2/Baqara, 121; 24/Nûr, 51))

وَاِذْ نَتَقْنَا الْجَبَلَ فَوْقَهُمْ كَاَنَّهُ ظُلَّةٌ وَظَنُّٓوا اَنَّهُ وَاقِعٌ بِهِمْ خُذُوا
مَٓا اٰتَيْنَاكُمْ بِقُوَّةٍ وَاذْكُرُوا مَا فٖيهِ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ ﴿١٧١﴾ وَاِذْ
اَخَذَ رَبُّكَ مِنْ بَنٖٓى اٰدَمَ مِنْ ظُهُورِهِمْ ذُرِّيَّتَهُمْ وَاَشْهَدَهُمْ
عَلٰٓى اَنْفُسِهِمْ اَلَسْتُ بِرَبِّكُمْ قَالُوا بَلٰى شَهِدْنَا اَنْ تَقُولُوا
يَوْمَ الْقِيٰمَةِ اِنَّا كُنَّا عَنْ هٰذَا غَافِلٖينَ ﴿١٧٢﴾ اَوْ تَقُولُٓوا اِنَّمَٓا
اَشْرَكَ اٰبَٓاؤُنَا مِنْ قَبْلُ وَكُنَّا ذُرِّيَّةً مِنْ بَعْدِهِمْ اَفَتُهْلِكُنَا
بِمَا فَعَلَ الْمُبْطِلُونَ ﴿١٧٣﴾ وَكَذٰلِكَ نُفَصِّلُ الْاٰيَاتِ وَلَعَلَّهُمْ
يَرْجِعُونَ ﴿١٧٤﴾ وَاتْلُ عَلَيْهِمْ نَبَاَ الَّذٖٓى اٰتَيْنَاهُ اٰيَاتِنَا فَانْسَلَخَ
مِنْهَا فَاَتْبَعَهُ الشَّيْطَانُ فَكَانَ مِنَ الْغَاوٖينَ ﴿١٧٥﴾ وَلَوْ
شِئْنَا لَرَفَعْنَاهُ بِهَا وَلٰكِنَّهُٓ اَخْلَدَ اِلَى الْاَرْضِ وَاتَّبَعَ هَوٰيهُ
فَمَثَلُهُ كَمَثَلِ الْكَلْبِ اِنْ تَحْمِلْ عَلَيْهِ يَلْهَثْ اَوْ تَتْرُكْهُ
يَلْهَثْ ذٰلِكَ مَثَلُ الْقَوْمِ الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا فَاقْصُصِ
الْقَصَصَ لَعَلَّهُمْ يَتَفَكَّرُونَ ﴿١٧٦﴾ سَٓاءَ مَثَلًا الْقَوْمُ الَّذٖينَ
كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَاَنْفُسَهُمْ كَانُوا يَظْلِمُونَ ﴿١٧٧﴾ مَنْ يَهْدِ اللّٰهُ
فَهُوَ الْمُهْتَدٖى وَمَنْ يُضْلِلْ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿١٧٨﴾

**171.** (Bi bîr bînin!) Demekî me çiya (yê Tûr) weke sîwanekî di ser wan de rakiribû û wan guman dikir ku wê di ser wan de bikeve. (Me ji wan re wiha şîret kir:) "Tiştên min daye we bi bîr bînin û zexm bigirin ku hûn xwe biparêzin."

**172.** (Bi bîr bîne!) Dema ku Rabbê te ji pişta Âdem zurîyeta wan girtibû û ji nefsa wan re kiribû şahid (û ji wan re got:) "Ma ez ne Rabbê we me?" Hemûyan gotin: "Belê (Tu Rabbê me yî), em ji vêya re şahid in." (Ev,) ji bo ku hûn roja qiyametê nebêjin: "Em ji vêya ne haydar bûn".

**173.** An jî ji bo ku hûn nebêjin: "Bavûkalên me hêj pêşî de (ji Allah re) şirîk çêkiribûn. Em jî nifşeke/nesleke li pey wan de ne (û em peyrevê wan in). Ma qey tu yê ji ber kar û kirinên ehlê batil, me helak bikî?"

(Ev soza ku li alema erwah ji însanan hatîye sitendin di nav ahd û peymanan de yê herî muhîm û bi qîmet e. Wê gavê însan ev soz daye ku; di her halukarî de wek Rab tenê bitenê wê Allah (ac) bipejirîne û ji wî pê ve qet tu xaliq û raziq û malik û mudebbîrê kaînatê nas nake. Û rayeya qanûnçêkerîyê jî ji wî pê ve qethîyen nade tu kesên din. Ayet, ji bo sitendina mîsaqa tewhîdê du sebep dide pêş:

A yekem: Ji bo ku "Ez cahil bûm.", "Ez ne agahdar bûm.", "Min seh nekiribû.", "Min nizanîbû." û mazeretên hwd. Ji holê rake. Lewre Allah (ac) tenê bi peymangirtina ji



însan têr nekiriye û di heman demê de wî li ser fitretê xuliqandîye. (Bnr. 30/Rûm, 30) Ji xeynî vê kâinat seranser bi ayetên/bi delîlên hebûn û yekîtîya Allah (ac) raxistî ye/xemilandî ye. (Bnr. 2/Baqara, 163-164) Ligel van hemûyan di ser de jî Rasûlan hatine şandin û wan jî însanan dawetî tewhîdê kirine. (Bnr. 4/Nîsa, 165) Digel evqas delîlan, cahiltî/nezanî di mijara tewhîdê de ku ew meqseda xuliqandinê ye qet nabe mazeret.

A duyem: Hincetên wan kesên ku dibêjin "Ez peyrevê babê xwe an seydayê xwe an şêxê xwe an jî serokê xwe bûm..." ji holê radike. Li ser mijara wî kesê ku ji Allah re şirîk çêdike teqlîd û peyrevîtî jê re nabe mazeret bnr. 2/Baqara, 166-167; 7/A'raf, 38-39; 14/Îbrahîm, 21; 33/Ahzab, 67-68; 34/Sebe', 31-33.)

**174.** Em bi vî awayî ayetên xwe wiha bi kitekit/bi hûrgilî beyan dikin da ku (bi ser wê ehda xwe ya ku dabûn Allah) vegerin.

(Ji bo hikmetên ku Qur'ana Kerîm Kitêbeke 1mufesselbûyî/kitekitbûyî ye, bnr. 6/1En'âm, 55.)

**175.** Ji wan re, behsa wî kesê bike ku me ayetên xwe dabûyê. Wî xwe ji ayetên me xeritand/aritand û şeytan wî kiribû peyrevê xwe û (di encamê de) bibû ji yên har (û bitir) bûyî.

**176.** Eger me bixwesta (bi ilim û delîlên ku me danê) me yê ew herî bilind bikira. Lê wî meylî dinyayê kir û da pey hewayê/hewesê xwe. Mîsala wî, wekî mesela wî kuçikî ye ku, tu bi ser de herî zimanê xwe derdixe û dihelike û dev jê berdî jî dîsa zimanê xwe derdixîne û dihelike. Ha rewşa civaka ku ayetên me tekzîb kirine a wiha ye. Ji bo ku baş bifikirin ji wan re behsa qiseyan bike.

(Ji bo wezîfe û mesûlîyeta aliman bnr. 2/Baqara, 159; 3/Âl-î Îmran, 187.)

**177.** Mîsala ew ên ayetên me tekzîb kirine û bi tenê li xwe zilim kirine çi qas xerab e.

**178.** Allah, her kî hîdayet kiribe wî, hîdayet dîtîye. Kî jî bixerifîne êdî ew ên bi xusranê ketine ew bixwe ne.

وَلَقَدْ ذَرَاْنَا لِجَهَنَّمَ كَثِيرًا مِنَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِ لَهُمْ قُلُوبٌ
لَا يَفْقَهُونَ بِهَا وَلَهُمْ اَعْيُنٌ لَا يُبْصِرُونَ بِهَا وَلَهُمْ اٰذَانٌ لَا يَسْمَعُونَ
بِهَا اُولٰٓئِكَ كَالْاَنْعَامِ بَلْ هُمْ اَضَلُّ اُولٰٓئِكَ هُمُ الْغَافِلُونَ ﴿١٧٩﴾ وَلِلّٰهِ
الْاَسْمَٓاءُ الْحُسْنٰى فَادْعُوهُ بِهَا وَذَرُوا الَّذٖينَ يُلْحِدُونَ فٖٓي اَسْمَٓائِهٖ
سَيُجْزَوْنَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١٨٠﴾ وَمِمَّنْ خَلَقْنَٓا اُمَّةٌ يَهْدُونَ بِالْحَقِّ
وَبِهٖ يَعْدِلُونَ ﴿١٨١﴾ وَالَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا سَنَسْتَدْرِجُهُمْ مِنْ حَيْثُ
لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٨٢﴾ وَاُمْلٖي لَهُمْ اِنَّ كَيْدٖي مَتٖينٌ ﴿١٨٣﴾ اَوَلَمْ يَتَفَكَّرُوا
مَا بِصَاحِبِهِمْ مِنْ جِنَّةٍ اِنْ هُوَ اِلَّا نَذٖيرٌ مُبٖينٌ ﴿١٨٤﴾ اَوَلَمْ يَنْظُرُوا
فٖي مَلَكُوتِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا خَلَقَ اللّٰهُ مِنْ شَيْءٍ
وَاَنْ عَسٰٓى اَنْ يَكُونَ قَدِ اقْتَرَبَ اَجَلُهُمْ فَبِاَيِّ حَدٖيثٍ بَعْدَهُ
يُؤْمِنُونَ ﴿١٨٥﴾ مَنْ يُضْلِلِ اللّٰهُ فَلَا هَادِيَ لَهُ وَيَذَرُهُمْ فٖي طُغْيَانِهِمْ
يَعْمَهُونَ ﴿١٨٦﴾ يَسْـَٔلُونَكَ عَنِ السَّاعَةِ اَيَّانَ مُرْسٰيهَا قُلْ اِنَّمَا
عِلْمُهَا عِنْدَ رَبّٖي لَا يُجَلّٖيهَا لِوَقْتِهَٓا اِلَّا هُوَ ثَقُلَتْ فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ لَا تَأْتٖيكُمْ اِلَّا بَغْتَةً يَسْـَٔلُونَكَ كَاَنَّكَ حَفِيٌّ عَنْهَا
قُلْ اِنَّمَا عِلْمُهَا عِنْدَ اللّٰهِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٨٧﴾

**179.** Sond be, me ji bo cehennemê ji cin û însanan gelek kes xuliqandin. Qelbê wan heye lê bi wî fêm nakin. Çavê wan heye lê bi wan nabînin. Guhê wan heye lê bi wan nabihîzin. Evana weke heywanan in, heta hê (ji heywanan) jî rêşaştir in. Ew, yên di xefletê de bixwe ne.

**180.** Navên herî xweşik (el-esma-u'l-hûsna) aîdê Allah in. (Nexwe) ji wî re bi van navan dûa bikin. Dev ji ew ên der heqê navê wî de ketine îlhadê/çewtîyê berdin. Ji ber tiştên ku kirine wê di nêzîk de bêne cezakirin.

(Îlhad: Tê ser maneya çewtî û meyîl û jirêketine. Der barê Esmau'l-hûsna de jirêketina bi her awayî îlhad e. Esmau'l-hûsna ku bitevahî aîdê Allah in, binavkirina hin heyînan bi van navan û terka dûakirina ji Allah (ac) re bi Esmau'l-hûsna û ji mexluqatên wî hewarî û medet xwestin; înkara mane û sifetên naveroka van navan û texrîf û tewîlkirina wan; temsîla/şibandina Allah bi evdan û şibandina/temsîla evdan bi Allah; terkkirina Esmau'l-hûsna ku dibin wesîleya nêzbûna Allah û bi hin mirovan re tewessûla li Allah... Her yekî ji van, mînak û mîsala îlhadê ye. Ji bo ism û sifetên Allah ji xeynî vê bnr. 3/Âl-î Îmran, 181; 42/Şûrâ, 11; 57/Hadîd, 4.)

**181.** Ji mexluqên me civatek heye ku ji heqîyê re rehberîyê dikin û bi heqîyê hukim didin (an jî bi heq/bi wehîyê rehberî dikin û pê edaletê pêk tînin).

**182.** Ew ên ayetên me tekzîb dikin jî em ê ji cihekî ku pê nizanin wan gav bi gav/hêdî hêdî nêzîk (î helakê) bikin.

**183.** Ez muhletê didim wan. Kemîna min (ji bo wan danîye û wan gav bi gav nêzî ezabê dike) pir zexim e.

**184.** Ma ew qet nafikirin? Ku di hevalê wan (ew Nebîyê ji wan re hatîye şandin) de qet tu dînîtî tune. Ew, her hişyarkerekî eşkere ye.

**185.** Li melekûta erd û esmanan (ku bi ayetên bê jimar xemilandî ye û însanan heyirî dihêle) û li mexluqatên Allah û li îhtîmala ku mirina wan nêz bûye re narênin û nafikirin? Ma ew (piştî ku bi vêya bawer nekirin) êdî wê bi kîjan peyvê bawer bikin?

**186.** Allah her kî bixerifîne êdî yê ku wî hîdayet bike tune. Wan di nava tuxyanê de bi şaşîtî dihêle.

**187.** Ji te dipirsin ka seata qiyametê kengê ye? Bibêje: "Ilmê wê li bal Rabbê min e. Ji wî pê ve kes nikare wextê wê eşkere bike. (Agahîya wê û heqîqeta pêkhatina wê) ji wan ên li erd û esmanan e re giran tê. Ew ji we re ji nîşka ve tê." Dibêjin qey tu bi hatina wê dizanî, tên ji te dipirsin. Bibêje: "Îlmê wê bitenê li îndallah/li cem Allah e. Lê pirên însanan nizanin."

قُلْ لَٓا اَمْلِكُ لِنَفْسٖى نَفْعًا وَلَا ضَرًّا اِلَّا مَا شَٓاءَ اللّٰهُۜ وَلَوْ كُنْتُ
اَعْلَمُ الْغَيْبَ لَاسْتَكْثَرْتُ مِنَ الْخَيْرِۚ وَمَا مَسَّنِىَ السُّٓوءُ
اِنْ اَنَا اِلَّا نَذٖيرٌ وَبَشٖيرٌ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿١٨٨﴾ هُوَ الَّذٖى خَلَقَكُمْ
مِنْ نَفْسٍ وَاحِدَةٍ وَجَعَلَ مِنْهَا زَوْجَهَا لِيَسْكُنَ اِلَيْهَاۚ فَلَمَّا
تَغَشّٰيهَا حَمَلَتْ حَمْلًا خَفٖيفًا فَمَرَّتْ بِهٖۚ فَلَمَّٓا اَثْقَلَتْ دَعَوَا اللّٰهَ
رَبَّهُمَا لَئِنْ اٰتَيْتَنَا صَالِحًا لَنَكُونَنَّ مِنَ الشَّاكِرٖينَ ﴿١٨٩﴾
فَلَمَّٓا اٰتٰيهُمَا صَالِحًا جَعَلَا لَهُ شُرَكَٓاءَ فٖيمَٓا اٰتٰيهُمَاۚ فَتَعَالَى اللّٰهُ
عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿١٩٠﴾ اَيُشْرِكُونَ مَا لَا يَخْلُقُ شَيْـًٔا وَهُمْ يُخْلَقُونَۘ ﴿١٩١﴾
وَلَا يَسْتَطٖيعُونَ لَهُمْ نَصْرًا وَلَٓا اَنْفُسَهُمْ يَنْصُرُونَ ﴿١٩٢﴾
وَاِنْ تَدْعُوهُمْ اِلَى الْهُدٰى لَا يَتَّبِعُوكُمْۜ سَوَٓاءٌ عَلَيْكُمْ
اَدَعَوْتُمُوهُمْ اَمْ اَنْتُمْ صَامِتُونَ ﴿١٩٣﴾ اِنَّ الَّذٖينَ تَدْعُونَ
مِنْ دُونِ اللّٰهِ عِبَادٌ اَمْثَالُكُمْ فَادْعُوهُمْ فَلْيَسْتَجٖيبُوا لَكُمْ
اِنْ كُنْتُمْ صَادِقٖينَ ﴿١٩٤﴾ اَلَهُمْ اَرْجُلٌ يَمْشُونَ بِهَاۘ اَمْ لَهُمْ
اَيْدٍ يَبْطِشُونَ بِهَاۘ اَمْ لَهُمْ اَعْيُنٌ يُبْصِرُونَ بِهَاۘ اَمْ لَهُمْ اٰذَانٌ
يَسْمَعُونَ بِهَاۜ قُلِ ادْعُوا شُرَكَٓاءَكُمْ ثُمَّ كٖيدُونِ فَلَا تُنْظِرُونِ ﴿١٩٥﴾

**188.** Bibêje: "Ji daxwaza Allah pê ve ez ji xwe re jî ne hêza feyde û zerarê me. Eger min bi xeybê zanîbûya, min ê ji xwe re pir xêr bikira û ji ya bizerar jî min ê xwe bida paş. Ez ji bo qewmekî bawermend bi tenê hişyarker û mizgînvan im."

**189.** Ew e, yê ku hûn ji yek nefsekî (ji Âdem) xuliqandîye û ji bo bigihîje sekînetê ji wî jî hevjîna wî çêkiriye ew e. Dema xwe lê rapêçand/nuxamt (çû balê) hevala wî barekî sivik hilgirt (bi hemil bû û demekî) pê re gerîya. Dema hemla wê giran bû her duyan ji Allahê Rabbê xwe re wiha dûa kirin: "Eger tu (ewladekî) qenc/salih bidî me sond be em ê bibin ji şikurdaran."

**190.** Wextê (Allah) zarokekî salih da wan, rabûn bi tiştê ku (Allah) dabû wan jê re şirîk çêkirin. Allah, ji tiştê ku pê şirîkatîyê dikin herî bilindtir/berztir e.

(Ev mijar pir eşkere ye ku ew ên ji Allah (ac) re şirîk çêkirine ne Âdem (as) û hevjîna wî ye. Di ayetê de ji wan ên ku şirîk çêkirine de meqsed zaroyên Âdem in.)

**191.** Nexwe ew, wan heyînên tiştekî nexuliqandine û ew bixwe hatine xuliqandin (ji Allah re) şirîk çêdikin?

**192.** (Lê belê) ew heyînên hanê ne dikarin alîkarîya wan (perestkarên xwe) û ne jî alîkarîya xwe bixwe bikin.

**193.** Eger hûn wan gazî hîdayetê bikin ew li dûv we nayên. Jixwe hûn wan dawet jî bikin û sikût jî bikin ji wan re yek e (îman naynin).

**194.** Ew heyînên ku hûn ji xeynî Allah ji wan re îbadet dikin jî weke we evd (ên Allah) in. Eger hûn di gotina xwe de rast in, ka gazî wan bikin bila bersivê bidin we.

**195.** Ma qey lingên wan ên pê dimeşin an destên wan ên pê digirin an jî guhên wan ên pê dibihîzin hene (ku bersivê bidin banga we)? Bibêje: "Gazî şirîkên xwe bi tevahî bikin. Paşê ji min re kemîn a ku ji destê we tê deynin û qet nehêlin ku ez çavê xwe vekim."

(Ji bo helwesta îmanî ya li hemberî tehdîdên ehlê şirkê bnr. 6/En'am, 82.)

اِنَّ وَلِيِّـيَ اللّٰهُ الَّذ۪ي نَزَّلَ الْكِتَابَۘ وَهُوَ يَتَوَلَّى الصَّالِح۪ينَ ١٩٦
وَالَّذ۪ينَ تَدْعُونَ مِنْ دُونِه۪ لَا يَسْتَط۪يعُونَ نَصْرَكُمْ
وَلَٓا اَنْفُسَهُمْ يَنْصُرُونَ ١٩٧ وَاِنْ تَدْعُوهُمْ اِلَى الْهُدٰى
لَا يَسْمَعُواۜ وَتَرٰيهُمْ يَنْظُرُونَ اِلَيْكَ وَهُمْ لَا يُبْصِرُونَ ١٩٨
خُذِ الْعَفْوَ وَاْمُرْ بِالْعُرْفِ وَاَعْرِضْ عَنِ الْجَاهِل۪ينَ ١٩٩
وَاِمَّا يَنْزَغَنَّكَ مِنَ الشَّيْطَانِ نَزْغٌ فَاسْتَعِذْ بِاللّٰهِۜ اِنَّهُ سَم۪يعٌ
عَل۪يمٌ ٢٠٠ اِنَّ الَّذ۪ينَ اتَّقَوْا اِذَا مَسَّهُمْ طَٓائِفٌ مِنَ الشَّيْطَانِ
تَذَكَّرُوا فَاِذَا هُمْ مُبْصِرُونَۚ ٢٠١ وَاِخْوَانُهُمْ يَمُدُّونَهُمْ فِي الْغَيِّ
ثُمَّ لَا يُقْصِرُونَ ٢٠٢ وَاِذَا لَمْ تَأْتِهِمْ بِاٰيَةٍ قَالُوا لَوْلَا اجْتَبَيْتَهَاۜ
قُلْ اِنَّمَٓا اَتَّبِعُ مَا يُوحٰٓى اِلَيَّ مِنْ رَبّ۪يۚ هٰذَا بَصَٓائِرُ مِنْ رَبِّكُمْ
وَهُدًى وَرَحْمَةٌ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ٢٠٣ وَاِذَا قُرِئَ الْقُرْاٰنُ فَاسْتَمِعُوا
لَهُ وَاَنْصِتُوا لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ ٢٠٤ وَاذْكُرْ رَبَّكَ ف۪ي نَفْسِكَ
تَضَرُّعًا وَخ۪يفَةً وَدُونَ الْجَهْرِ مِنَ الْقَوْلِ بِالْغُدُوِّ وَالْاٰصَالِ
وَلَا تَكُنْ مِنَ الْغَافِل۪ينَ ٢٠٥ اِنَّ الَّذ۪ينَ عِنْدَ رَبِّكَ
لَا يَسْتَكْبِرُونَ عَنْ عِبَادَتِه۪ وَيُسَبِّحُونَهُ وَلَهُ يَسْجُدُونَ ٢٠٦

**196.** “Bêguman welîyê min/dostê min Allah e ku (wî) Kitêb nazil kiriye. Ew, salihan (ji bo xwe) welî digire.”

**197.** Ew heyînên ji xeynî wî hûn ji wan re dûa dikin jî ne dikarin alîkarîya wan (perestkarên xwe) û ne jî alîkarîya xwe bixwe bikin.

**198.** Hûn wan gazî hîdayetê bikin jî nabihîzin. Tu dibêjî qey li te dinêrin, lê ew te nabînin jî.

**199.** (Digel van hemûyan) tu bi rêya efûyê bigire û fermana ya qenc bike û ji cahilan rû vegerîne.

**200.** Çi dema ji şeytan wasewasek/dilxuşûşîyek bigihîje te, xwe bispêre Allah. Bêguman ew (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**201.** Kesên mutteqî dema ku ji hêla/ji alîyê şeytanan ve (bi wasewas û fîtkirinê) têne dorpêçkirin (ew ên mutteqî, Allah) bi bîr tînin û wî zikir dikin. Ew (tu dibînî ku di heman demê de ji wê rewşê xelas dibin û li dij wasewasên şeytan) dibin xwedî besîret.




**202.** (Ew ên bi şeytanan re dost û) bira ne jî (şeytan) wan dikişine xerifîtîyê û (xerifandina wan ji bo xwe wek wacib dibîne û vê wezîfeya) xwe qet li paş nahêle.

**203.** (Ew ên ku ji te bûyerên herînuwaze/harîqulade û mucîzeyan dixwazin) dema ku tu ji wan re ayetek/mucîzeyek naynî dibêjin: “Hema te yê ew berhev bikira!” Bibêje: “Ez bi tenê didim pey tiştê ku Rabbê min ji min re wehîy kiriye.” (Îlleh hûn ayetek/mucîzeyek bixwazin) ha ev (Kitêb), ayetek/mucîzeyek wiha ye ku besîretek ji Rabbê we dihewîne û di nava wê de ji bo qewmê mumîn hîdayet û rahmet heye.”

**204.** (Eger hûn bixwazin ji ayetên Qur'ana ku însan dike xwedî besîret û wî digihîjînê hîdayetê û wî radigihîne rahmetê îstîfade bikin) dema ku Qur'an tê xwendin guhdar bin û sikût bikin. Hêvî heye ku rahmet li we bibe.

**205.** Bi lavelaveke ji dil û bi tirs û bi dengekî nizim/navincî sibeh û êvar Rabbê xwe zikir bike. Nebe tu bibî ji xafilan!

(Ev ayet giringî û edeba zikrê diyar kiriye. Rasûlullah (ass) û eshabê kiram (re) di çarçova vê edebê de Allah (ac) zikir kirine. Ew ayînên ku navê wan ‘Xeleqeyên zikrê’ ne û ne li gorî vê edebê ne, ji hin dînên din hatine sitendin û ew tişt ne ji îslâmê ye.)

**206.** Bêguman ew (melâiket) ên li cem Rabbê te ne, ji ber ku jê re îbadetê dikin tu carî mezinayîyê nakin. Wî tesbîh dikin û ji wî tenê re secde dikin.

سُورَةُ الْأَنْفَالِ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ خَمْسٌ وَسَبْعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
يَسْـَٔلُونَكَ عَنِ الْاَنْفَالِۜ قُلِ الْاَنْفَالُ لِلّٰهِ وَالرَّسُولِۚ فَاتَّقُوا اللّٰهَ
وَاَصْلِحُوا ذَاتَ بَيْنِكُمْۖ وَاَطِيعُوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُٓ اِنْ كُنْتُمْ
مُؤْمِنِينَ ﴿١﴾ اِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ الَّذِينَ اِذَا ذُكِرَ اللّٰهُ وَجِلَتْ قُلُوبُهُمْ
وَاِذَا تُلِيَتْ عَلَيْهِمْ اٰيَاتُهُ زَادَتْهُمْ اِيمَانًا وَعَلٰى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَۚ ﴿٢﴾
اَلَّذِينَ يُقِيمُونَ الصَّلٰوةَ وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ يُنْفِقُونَۜ ﴿٣﴾ اُو۬لٰٓئِكَ
هُمُ الْمُؤْمِنُونَ حَقًّاۜ لَهُمْ دَرَجَاتٌ عِنْدَ رَبِّهِمْ وَمَغْفِرَةٌ وَرِزْقٌ كَرِيمٌۚ ﴿٤﴾
كَمَٓا اَخْرَجَكَ رَبُّكَ مِنْ بَيْتِكَ بِالْحَقِّۖ وَاِنَّ فَرِيقًا مِنَ الْمُؤْمِنِينَ
لَكَارِهُونَۙ ﴿٥﴾ يُجَادِلُونَكَ فِي الْحَقِّ بَعْدَ مَا تَبَيَّنَ كَاَنَّمَا يُسَاقُونَ
اِلَى الْمَوْتِ وَهُمْ يَنْظُرُونَۜ ﴿٦﴾ وَاِذْ يَعِدُكُمُ اللّٰهُ اِحْدَى الطَّٓائِفَتَيْنِ
اَنَّهَا لَكُمْ وَتَوَدُّونَ اَنَّ غَيْرَ ذَاتِ الشَّوْكَةِ تَكُونُ لَكُمْ
وَيُرِيدُ اللّٰهُ اَنْ يُحِقَّ الْحَقَّ بِكَلِمَاتِهِ وَيَقْطَعَ دَابِرَ الْكَافِرِينَۙ ﴿٧﴾
لِيُحِقَّ الْحَقَّ وَيُبْطِلَ الْبَاطِلَ وَلَوْ كَرِهَ الْمُجْرِمُونَۚ ﴿٨﴾



## 8. SÛREYA ENFÂL

*(Sûreya Enfâl, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û heftê û pênc (75) ayet e. )*

*Di Qur'anê de sûreya heştemîn e. Dema ku şera Bedrê cereyan dikir nazil bûye. Ji ber vê yekê sûreya Enfâl bi ekserîyet behsa hukmên şer û hiqûqa cîhadê dike. Li ser mijara serkeftina muslîman û encamên vê rewşê sekinîye. Navê sûreyê (Enfâl) jî tê ser maneya xenîmetên ku dawîya şer de tên bi dest xistin e. Hukmên xenîmetan jî ji mijarên vê sûreyê ye.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Pirsa xenîmetan ji te dikin. Bibêje: "(Der heqê hukimdayîna) xenîmetan (de raye) aîdê Allah û Rasûlê wî ye. Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û navbera xwe bisilhînin. Eger hûn mumîn in îtaetî Allah û Rasûlê wî bikin."

**2.** Mumîn enceq ew kes in ku; dema Allah tê zikirkirin qelbê wan dilerize. Dema ayetên wî ji wan re tên xwendin îmana wan zêdetir dibe û ew bi tenê tewekkulê Rabbê xwe dikin.

**3.** Ew in ku; nimêja xwe rasterast dikin û ji rizqê ku me daye wan înfaq dikin.

**4.** Ha ev ên ha mumînên heqîqî ne. Ji wan re li cem Rabbê wan derece (ku wesîleya serdestîyê ye) û mexfîret û rizqekî xweşik heye.

**5.** Digel ku komek ji mumînan ne dixwestin jî Rabbê te li ser heqîyê ji mala te derxistîye (her ku der heqê xenîmetan de komek bêdil bûn jî tu li gorî emrê Allah tevbigere. Wê encam bixêr be).

**6.** Piştî ku heq eşkere bû te digot qey ber bi mirinê ve têne kişandin û (ji bo dernekevin şer) bi te re li ser heqîyê diketin nîqaşê.

**7.** (Bi bîr bînin!) Dema ku Allah (yekî xurt û yek jî qels) ji her du taîfeyan yek ji we re wead kiribû. Lê we dixwest ku (bê betilandin) hûn taîfeya qels bi dest bixin. Lê belê Allah dixwest ku bi kelîmeyên xwe heqîyê serdest bike û dawîya kafiran bîne (koka wan rake).

**8.** Gunehkarên mucrîm nexwazin jî (Allah dixwest ku) heqîyê (timûdaîm) serdest bike û batil jî ji holê rake.

اِذْ تَسْتَغ۪يثُونَ رَبَّكُمْ فَاسْتَجَابَ لَكُمْ اَنّ۪ي مُمِدُّكُمْ
بِاَلْفٍ مِنَ الْمَلٰٓئِكَةِ مُرْدِف۪ينَ ﴿٩﴾ وَمَا جَعَلَهُ اللّٰهُ
اِلَّا بُشْرٰى وَلِتَطْمَئِنَّ بِه۪ قُلُوبُكُمْۚ وَمَا النَّصْرُ اِلَّا مِنْ عِنْدِ
اللّٰهِۜ اِنَّ اللّٰهَ عَز۪يزٌ حَك۪يمٌ ﴿١٠﴾ اِذْ يُغَشّ۪يكُمُ النُّعَاسَ
اَمَنَةً مِنْهُ وَيُنَزِّلُ عَلَيْكُمْ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً لِيُطَهِّرَكُمْ
بِه۪ وَيُذْهِبَ عَنْكُمْ رِجْزَ الشَّيْطَانِ وَلِيَرْبِطَ عَلٰى قُلُوبِكُمْ
وَيُثَبِّتَ بِهِ الْاَقْدَامَۜ ﴿١١﴾ اِذْ يُوح۪ي رَبُّكَ اِلَى الْمَلٰٓئِكَةِ اَنّ۪ي
مَعَكُمْ فَثَبِّتُوا الَّذ۪ينَ اٰمَنُواۜ سَاُلْق۪ي ف۪ي قُلُوبِ الَّذ۪ينَ
كَفَرُوا الرُّعْبَ فَاضْرِبُوا فَوْقَ الْاَعْنَاقِ وَاضْرِبُوا مِنْهُمْ كُلَّ
بَنَانٍ ﴿١٢﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ شَٓاقُّوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُۚ وَمَنْ يُشَاقِقِ
اللّٰهَ وَرَسُولَهُ فَاِنَّ اللّٰهَ شَد۪يدُ الْعِقَابِ ﴿١٣﴾ ذٰلِكُمْ فَذُوقُوهُ
وَاَنَّ لِلْكَافِر۪ينَ عَذَابَ النَّارِ ﴿١٤﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا
اِذَا لَق۪يتُمُ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا زَحْفًا فَلَا تُوَلُّوهُمُ الْاَدْبَارَۚ ﴿١٥﴾
وَمَنْ يُوَلِّهِمْ يَوْمَئِذٍ دُبُرَهُٓ اِلَّا مُتَحَرِّفًا لِقِتَالٍ اَوْ مُتَحَيِّزًا اِلٰى فِئَةٍ
فَقَدْ بَٓاءَ بِغَضَبٍ مِنَ اللّٰهِ وَمَاْوٰيهُ جَهَنَّمُۜ وَبِئْسَ الْمَص۪يرُ ﴿١٦﴾

**9.** Bi bîr bînin! We ji Rabbê xwe alîkarî xwestibû wî jî wiha îcabetî dûayê we kiribû: “Bêguman ez ê bi hezar melâiketên ku di pey hevdu de dadikevin re alîkarîya we bikim.”

**10.** Allah, enceq ji bo ku qelbê we mutmeîn bibe û ji we re bibe mizgîn ev kiribû. Alîkarî/serkeftin bi tenê ji îndallah e. Bêguman Allah (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**11.** Wê gavê ji alîyê Allah ve li ser ewlehîyê xeweke sivik bi we girtibû. Ji bo ku we paqij bike û pîsîtîyên şeytan ji we biborîne û qelbên we (li ser yeqîn û qerardarîyê) bi hev re girê bide û bi vêya lingên we li erdê zexim bike, di ser we de ji asîmân baran barandibû.

**12.** Rabbê te ji melâîketan re wehîy kiribû û gotibû: “Ez bi we re me, (hûn) sebatê bidin mumînan. Ez ê tirseke bişîdet têxim dilên kafiran. (Nexwe) li sitûyê wan bixin û li hemû tilîyên wan bixin!”

**13.** Sebebê veya ev e, ji ber ku wan li dijî Allah û Rasûlê wî serî rakiribûn/di sefa hember de cih girtibûn. Kî jî li dijî Allah û Rasûlê wî serî rake/di sefa hember de cih bigire, bêguman cezayê Allah pir dijwar e.

**14.** Ha ev (ezaba we ya niha ye), bitamînin. Bêguman ji kafiran ezabek (jî) ji agir heye.

**15.** Gelî ew ên îmân anîne! Dema hûn bi zehfî/bi komî leqayî kafiran hatin (bi bezdana ji şer) pişta xwe nedin wan (û nebezin/nerevin).

**16.** Ew kesê ku di rojeke wiha de ji xeynî ku ji bo fendeki şerê xwe vekişîne an ji bo xwe bigihîne refekî din ne tê de, kî paş de vegere (ji qada şer bireve), bi rastî ew ber bi xezeba Allah ketîye. Sitargeha wî jî cehennem e. Ew cihlêvegerekî çiqas xerab e.

فَلَمْ تَقْتُلُوهُمْ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ قَتَلَهُمْۖ وَمَا رَمَيْتَ اِذْ رَمَيْتَ
وَلٰكِنَّ اللّٰهَ رَمٰىۚ وَلِيُبْلِيَ الْمُؤْمِنِينَ مِنْهُ بَلَٓاءً حَسَنًاۜ
اِنَّ اللّٰهَ سَمِيعٌ عَلِيمٌ ﴿١٧﴾ ذٰلِكُمْ وَاَنَّ اللّٰهَ مُوهِنُ كَيْدِ
الْكَافِرِينَ ﴿١٨﴾ اِنْ تَسْتَفْتِحُوا فَقَدْ جَٓاءَكُمُ الْفَتْحُۚ
وَاِنْ تَنْتَهُوا فَهُوَ خَيْرٌ لَكُمْۚ وَاِنْ تَعُودُوا نَعُدْۚ وَلَنْ تُغْنِيَ عَنْكُمْ
فِئَتُكُمْ شَيْـًٔا وَلَوْ كَثُرَتْۙ وَاَنَّ اللّٰهَ مَعَ الْمُؤْمِنِينَ ﴿١٩﴾
يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُٓوا اَطِيعُوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُ وَلَا تَوَلَّوْا عَنْهُ
وَاَنْتُمْ تَسْمَعُونَۚ ﴿٢٠﴾ وَلَا تَكُونُوا كَالَّذِينَ قَالُوا
سَمِعْنَا وَهُمْ لَا يَسْمَعُونَ ﴿٢١﴾ اِنَّ شَرَّ الدَّوَٓابِّ عِنْدَ اللّٰهِ
الصُّمُّ الْبُكْمُ الَّذِينَ لَا يَعْقِلُونَ ﴿٢٢﴾ وَلَوْ عَلِمَ اللّٰهُ فِيهِمْ
خَيْرًا لَاَسْمَعَهُمْۜ وَلَوْ اَسْمَعَهُمْ لَتَوَلَّوْا وَهُمْ مُعْرِضُونَ ﴿٢٣﴾
يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا اسْتَجِيبُوا لِلّٰهِ وَلِلرَّسُولِ اِذَا دَعَاكُمْ
لِمَا يُحْيِيكُمْۚ وَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ يَحُولُ بَيْنَ الْمَرْءِ وَقَلْبِهِ
وَاَنَّهُٓ اِلَيْهِ تُحْشَرُونَ ﴿٢٤﴾ وَاتَّقُوا فِتْنَةً لَا تُصِيبَنَّ الَّذِينَ
ظَلَمُوا مِنْكُمْ خَٓاصَّةًۚ وَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ شَدِيدُ الْعِقَابِ ﴿٢٥﴾

**17.** Yê ku wan dikuşt ne hûn bûn, lê Allah ewana kuşt. Dema te diavêt jî ne te diavêt, lê Allah (bû yê ku) diavêt. Ji bo ku (nîmeta serkeftinê bi wan bitamîne û) mumînan bi îmtîhaneke xweşik (biceribîne) loma (ev kir). Bêguman Allah (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**18.** Ha rewşa we wiha ye. (Herûdaîm alîkarî li we dibe.) Bêguman Allah ew e ku, kemînên kafiran pûç/betal derdixe.

**19.** (Gelî Qureyşîyan!) Eger we fetih dixwest, vaye ji we re fetih hat. (Allah, Rasûlê xwe muweffeq kir.) Eger hûn dev jê (ji kufr û neyartîya xwe yên berê) berdin, ev ji we re bixêrtir e. Hûn vegerin (rewşa xwe ya berê), em ê jî vegerin. Koma/hejmara we zêde be jî qet tu feyde nade we. Lewre Allah bi mumînan re ye.

**20.** Gelî ew ên îmân anîne! Ji Allah û ji pêxemberê wî re îtaetê bikin. Piştî ku we seh kir pê de jê rû nevegerînin.

**21.** Nebin wekî wan kesên digel nebihîstine jî dibêjin: “Me bihîst.”

**22.** Li îndallah/li cem Allah şerîrê/şerûdê candaran ew ên (li dij heqîyê) ker in û lal in û kesên têNagihîjin/bêhiş in.

**23.** Eger Allah xêrek di wan de bidîta, wê bi wan bida seh kirin. Lê bi wan bida seh kirin jî dîsa (îstîfade nedikirin û wê) rû vegerandibana û berê xwe biguhertana.

**24.** Gelî ew ên îmân anîne! Dema ji bo tiştên ku heyatê dide we hûn hatin gazîkirinê, îcabetî Allah û Rasûlê wî bikin û bizanibin ku bi rastî Allah dikeve navbera mirov û (fikr û ramanên) qelbê wî. Muheqeq hûn ê (bên vejandin û) di hizûra wî de bên civandin.

**25.** Ji wê fitneya ku li ser zilimkaran tenê naqewime (yê sûcdar û yê ne sûcdar hemû kesan dorpêç dike û bi erjeng e) xwe biparêzin. Bizanibin Allah ew e ku, cezayê wî dijwar e.

وَاذْكُرُٓوا اِذْ اَنْتُمْ قَل۪يلٌ مُسْتَضْعَفُونَ فِي الْاَرْضِ تَخَافُونَ
اَنْ يَتَخَطَّفَكُمُ النَّاسُ فَاٰوٰيكُمْ وَاَيَّدَكُمْ بِنَصْرِه۪
وَرَزَقَكُمْ مِنَ الطَّيِّبَاتِ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٢٦﴾ يَٓا اَيُّهَا
الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَخُونُوا اللّٰهَ وَالرَّسُولَ وَتَخُونُٓوا اَمَانَاتِكُمْ
وَاَنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٢٧﴾ وَاعْلَمُٓوا اَنَّمَٓا اَمْوَالُكُمْ وَاَوْلَادُكُمْ
فِتْنَةٌۙ وَاَنَّ اللّٰهَ عِنْدَهُٓ اَجْرٌ عَظ۪يمٌ ﴿٢٨﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا
اِنْ تَتَّقُوا اللّٰهَ يَجْعَلْ لَكُمْ فُرْقَانًا وَيُكَفِّرْ عَنْكُمْ
سَيِّـَٔاتِكُمْ وَيَغْفِرْ لَكُمْؕ وَاللّٰهُ ذُو الْفَضْلِ الْعَظ۪يمِ ﴿٢٩﴾
وَاِذْ يَمْكُرُ بِكَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا لِيُثْبِتُوكَ اَوْ يَقْتُلُوكَ
اَوْ يُخْرِجُوكَؕ وَيَمْكُرُونَ وَيَمْكُرُ اللّٰهُؕ وَاللّٰهُ خَيْرُ الْمَاكِر۪ينَ ﴿٣٠﴾
وَاِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا قَالُوا قَدْ سَمِعْنَا لَوْ نَشَٓاءُ لَقُلْنَا
مِثْلَ هٰذَٓاۙ اِنْ هٰذَٓا اِلَّٓا اَسَاط۪يرُ الْاَوَّل۪ينَ ﴿٣١﴾ وَاِذْ قَالُوا اللّٰهُمَّ
اِنْ كَانَ هٰذَا هُوَ الْحَقَّ مِنْ عِنْدِكَ فَاَمْطِرْ عَلَيْنَا حِجَارَةً
مِنَ السَّمَٓاءِ اَوِ ائْتِنَا بِعَذَابٍ اَل۪يمٍ ﴿٣٢﴾ وَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيُعَذِّبَهُمْ
وَاَنْتَ ف۪يهِمْؕ وَمَا كَانَ اللّٰهُ مُعَذِّبَهُمْ وَهُمْ يَسْتَغْفِرُونَ ﴿٣٣﴾

**26.** Bi bîr bînin! Hûn li ser erdê bi jimara xwe hindik bûn û zeîf bûn. Hûn ditirsîyan ku wê xelk (ên muşrîk) bi we bigirin û birevînin. Wî (Allah) hûn (li Medîneyê) bi cih kirin û bi alîkarîya xwe piştevanîya we kir û bi tiştên paqij hûn riziqandin da ku hûn şikur bikin.

**27.** Gelî ew ên îmân anîne! Îxanetê li Allah û li Rasûlê wî nekin. (Wekî din) bi zanebûn îxanetê li emanetê xwe jî nekin.

**28.** Bizanibin ku; mal û zarokên we ji bo we fitne ne. Bêguman li îndallah/li cem Allah mikafateke/xelateke mezin heye.

**29.** Gelî ew ên îmân anîne! Eger hûn ji Allah bitirsin û xwe biparêzin wê furqan (a ku hûn pê heq û batil û ya bi feyde û bi zerar ji hevdu veqetînin) bide we û qisûrên we binixûmîne û we efû bike. Allah xwedîyê lutf û îhsana mezin e.

**30.** (Bi bîr bîne!) Dema ew ên kafir ji bo ku te bigirin an bikujin an jî te (ji welatê te) derxînin kemînan datanîn. Ewana kemîn datanîn, Allah jî (kemînên wan pûç/betal dikir û li dij vê, bi awayê ku zerar bide wan) kemîn datanî. Allah, bixêrtirê kêmînçêkeran e.

**31.** Dema ku ayetên me ji wan re dihate xwendin, digotin: “Me bihîst. Eger em bixwazin em jî dikarin weke van (ayetan) vebibêjin. Ev ji çîrokên pêşîyan pê ve ne tiştekî din e.”

**32.** (Bi bîr bînin!) Dema gotibûn: “Allahê me! Eger ev (Qur'an) rastîyek ji cem te ye, êdî tu ji esmanan keviran bi ser me de bibarîne an jî ezabekî biêş û jan bide me.”

**33.** Lê heta tu di nav wan de bî, Allah ezab li wan nake. (Wekî din) heta îstîxfarê/bexişandinê daxwaz dikin jî Allah ezab li wan nake.

وَمِنْهُمْ مَنْ يَنْظُرُ اِلَيْكَۜ اَفَاَنْتَ تَهْدِى الْعُمْىَ وَلَوْ كَانُوا
لَا يُبْصِرُونَ ﴿٤٣﴾ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَظْلِمُ النَّاسَ شَيْـًٔا وَلٰكِنَّ النَّاسَ
اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ ﴿٤٤﴾ وَيَوْمَ يَحْشُرُهُمْ كَاَنْ لَمْ يَلْبَثُٓوا اِلَّا سَاعَةً
مِنَ النَّهَارِ يَتَعَارَفُونَ بَيْنَهُمْۜ قَدْ خَسِرَ الَّذ۪ينَ كَذَّبُوا بِلِقَٓاءِ
اللّٰهِ وَمَا كَانُوا مُهْتَد۪ينَ ﴿٤٥﴾ وَاِمَّا نُرِيَنَّكَ بَعْضَ الَّذ۪ى نَعِدُهُمْ
اَوْ نَتَوَفَّيَنَّكَ فَاِلَيْنَا مَرْجِعُهُمْ ثُمَّ اللّٰهُ شَه۪يدٌ عَلٰى مَا يَفْعَلُونَ ﴿٤٦﴾
وَلِكُلِّ اُمَّةٍ رَسُولٌۚ فَاِذَا جَٓاءَ رَسُولُهُمْ قُضِىَ بَيْنَهُمْ بِالْقِسْطِ وَهُمْ
لَا يُظْلَمُونَ ﴿٤٧﴾ وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا الْوَعْدُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ ﴿٤٨﴾
قُلْ لَٓا اَمْلِكُ لِنَفْس۪ى ضَرًّا وَلَا نَفْعًا اِلَّا مَا شَٓاءَ اللّٰهُۜ لِكُلِّ اُمَّةٍ
اَجَلٌۜ اِذَا جَٓاءَ اَجَلُهُمْ فَلَا يَسْتَاْخِرُونَ سَاعَةً وَلَا يَسْتَقْدِمُونَ ﴿٤٩﴾
قُلْ اَرَاَيْتُمْ اِنْ اَتٰيكُمْ عَذَابُهُ بَيَاتًا اَوْ نَهَارًا مَاذَا يَسْتَعْجِلُ
مِنْهُ الْمُجْرِمُونَ ﴿٥٠﴾ اَثُمَّ اِذَا مَا وَقَعَ اٰمَنْتُمْ بِه۪ۜ آٰلْـٰٔنَ وَقَدْ كُنْتُمْ
بِه۪ تَسْتَعْجِلُونَ ﴿٥١﴾ ثُمَّ ق۪يلَ لِلَّذ۪ينَ ظَلَمُوا ذُوقُوا عَذَابَ الْخُلْدِۚ
هَلْ تُجْزَوْنَ اِلَّا بِمَا كُنْتُمْ تَكْسِبُونَ ﴿٥٢﴾ وَيَسْتَنْبِـُٔونَكَ
اَحَقٌّ هُوَۜ قُلْ ا۪ى وَرَبّ۪ٓى اِنَّهُ لَحَقٌّ وَمَٓا اَنْتُمْ بِمُعْجِز۪ينَ ﴿٥٣﴾

**43.** Di nava wan de yên li te dinêrin jî hene. Digel ku besîreta wan girtî ye jî tu yê koran rasterê bikî?

**44.** Bêguman Allah, qet tu neheqîyê li însanan nake. Lê belê ew bixwe li nefsa xwe zilmê dikin.

**45.** Roja ku wan (vedijîne û) li hev kom dike, her wekî (li dinyayê) ji xeynî seateke rojê qet li wir nesekinîbin. Wê hevdû nas bikin. Bêguman ew ên leqayîbûna/derketina hizûra Allah derewandine di xusranê de ne. Ewana rêya rast jî nedîtine.

**46.** (Eger em bixwazin, ew (ezab) a ku me ji wan re wead kiriye em ê qismekî jê nîşanî te bidin an jî em ê te bimirînin (dîtina te wê bimîne axîretê). (Di her halukarî de) vegera wan bi bal me ve ye. Paşê Allah li ser ya ku ew dikin şahid e.

**47.** Ji her ummetekê re pêxemberekî wê heye. Dema ku pêxemberên wan ji wan re tê di nava wan de bi edaletê tê hukim kirin. Ew, tu neheqîyê jî nabînin.

**48.** Dibêjin: “Eger hûn di gotina xwe de rast in, ka ew wead (ezab) kîngê ye? (Bila bê da ku em bibînin!)”

**49.** Bibêje: “Daxwaza Allah ne tê de, ez ne xwedî hêz im ku zerarekê ji an jî feydeyekî bidim xwe. Ji her ummetê re ecelek heye. Dema ecelê wan bê, ne seatekî/lehzeyekî paş de dimînin û ne jî seatekî pêş ve diçin.”

**50.** Bibêje: “De ka ji min re bibêjin, eger ezaba Allah bi şev yan jî bi roj bi ser we de bê, ka hûn ê çi bikin? Mucrîmên gunehkar çima wê (ezabê) zû dixwazin (bi vê wê çi bi dest bixin)?

**51.** Gelo qey piştî ku ew (ezab) were hûn ê pê îmân bînin? Nexwe hûn ê hema vê gavê (îman bînin)! Lê we berê ji bo hatina wê (ezabê) dilezand!”

**52.** Paşê ji wan ên zilimkar re tê gotin: “De vê ezabê bêdawî tam bikin.” (Ma we hêvîya çi dikir?) Qey hûn ê ji xeynî keda xwe pê ve bi tiştekî din bên cezakirin?”

**53.** Ew bi daxwazîya ku ji te agahîyekê bistînin dibêjin: “Ka gelo ew (Qiyamet) rast e an na?” Bibêje: “Erê, qesem bi Allah be; bêguman ew heq e. Û hûn nikarin wî (Allah, ji pêkanîna wê rojê) aciz bihêlin.”

وَلَوْ اَنَّ لِكُلِّ نَفْسٍ ظَلَمَتْ مَا فِي الْاَرْضِ لَافْتَدَتْ بِهٖۜ
وَاَسَرُّوا النَّدَامَةَ لَمَّا رَاَوُا الْعَذَابَۚ وَقُضِيَ بَيْنَهُمْ بِالْقِسْطِ وَهُمْ
لَا يُظْلَمُونَ ﴿٥٤﴾ اَلَٓا اِنَّ لِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ اَلَٓا اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ
حَقٌّ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٥٥﴾ هُوَ يُحْيٖ وَيُمٖيتُ وَاِلَيْهِ
تُرْجَعُونَ ﴿٥٦﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ قَدْ جَٓاءَتْكُمْ مَوْعِظَةٌ مِنْ رَبِّكُمْ
وَشِفَٓاءٌ لِمَا فِي الصُّدُورِ وَهُدًى وَرَحْمَةٌ لِلْمُؤْمِنٖينَ ﴿٥٧﴾ قُلْ بِفَضْلِ
اللّٰهِ وَبِرَحْمَتِهٖ فَبِذٰلِكَ فَلْيَفْرَحُواۜ هُوَ خَيْرٌ مِمَّا يَجْمَعُونَ ﴿٥٨﴾
قُلْ اَرَاَيْتُمْ مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ لَكُمْ مِنْ رِزْقٍ فَجَعَلْتُمْ مِنْهُ
حَرَامًا وَحَلَالًاۜ قُلْ آٰللّٰهُ اَذِنَ لَكُمْ اَمْ عَلَى اللّٰهِ تَفْتَرُونَ ﴿٥٩﴾
وَمَا ظَنُّ الَّذٖينَ يَفْتَرُونَ عَلَى اللّٰهِ الْكَذِبَ يَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ اِنَّ اللّٰهَ
لَذُو فَضْلٍ عَلَى النَّاسِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَشْكُرُونَ ﴿٦٠﴾
وَمَا تَكُونُ فٖي شَاْنٍ وَمَا تَتْلُوا مِنْهُ مِنْ قُرْاٰنٍ
وَلَا تَعْمَلُونَ مِنْ عَمَلٍ اِلَّا كُنَّا عَلَيْكُمْ شُهُودًا اِذْ تُفٖيضُونَ
فٖيهِۜ وَمَا يَعْزُبُ عَنْ رَبِّكَ مِنْ مِثْقَالِ ذَرَّةٍ فِي الْاَرْضِ
وَلَا فِي السَّمَٓاءِ وَلَٓا اَصْغَرَ مِنْ ذٰلِكَ وَلَٓا اَكْبَرَ اِلَّا فٖي كِتَابٍ مُبٖينٍ ﴿٦١﴾

**54.** Kesên ku li xwe zilim kirine hemû tiştên li ser erdê bûna jî (ji bo ku ji ezab xelas bibin) wê hemû di ber xwe de/wek fidye bidana. Dema ew ezabê dibînin, poşmanîya xwe vedişêrin. Lê wê dîsa jî di nava wan de bi edalet bê hikumkirin û zilim li wan nayêkirin.

**55.** Baldar bin/Dîqat bikin! Hemû tiştên li erd û esmanan aîdê Allah in. Baldar bin/Dîqat bikin! Weada Allah heq e. Lê pirên wan nizanin.

**56.** Ew vedijîne û dimirîne. Û hûn ê bi bal wî de bên vegerandin.

**57.** Bibêje: "Gelî însanan! Ji we re ji Rabbê we şîretek û ji bo (nexweşînên manewî) ya di singan de şîfayek û ji bo mumînan hîdayet û rahmetek (Kitêbek) hatîye."

**58.** Bibêje: "Bila bi lutf û rahmeta Allah, (belê) bi tenê bi van dilxweş bibin. Ev (ji bo wan) ji wî yê ku dicivînin bixêrtir e."

**59.** Bibêje: "(De ka bibêjin) ma ew rizqê ku Allah ji we re daxistîye we qismekî wî helal kir û qismekî wî jî heram kiriye? Bibêje: "Di vê mijarê de Allah destûr daye we an hûn li ser Allah bêbextîyê dikin?"

**60.** Ew ên derewan li hev tînin û bêbextîyê li Allah dikin, gelo di heqê roja qiyametê de hêvîya wan çî ye? (Ka gelo dizanin ku ezabekî çawa lihêvîya wan e?) Bêguman Allah li ser însanan xwedî lûtif/îhsan e. Lê pirên wan (însanan dîsa jî) şikur nakin.

**61.** Tu di çî karî de dibî bibe û ji Qur'anê kîjan ayetê bixwînî û hûn çî karî bikin, dema ku we xwe da îşekî muheqeq em li ser we şahid in. Bi qasî misqalê zerre be jî ne li erdê û ne jî li esmanan tiştek ji Rabbê te re veşartî namîne. Dixwazî bila ji vêya (ji zerreyê) biçuktir an mezintir jî be, hemû di Kitêba mûbîn (Kitêba vikîvekirî) de nivîsandî ye.

**62.** Baldar bin/Dîqat bikin! Ji dostên Allah (ji ewlîyaullah) re tirs tune û ew xemgîn jî nabin.

**63.** Ew ên ku îmân anîne û xwedî teqwa ne.

**64.** Di heyata dinyayê de jî û li axîretê jî mizgînî ji wan re ye. Di gotinên/di hukmên Allah de qet guherîn tune. Ha, xelasîya mezin ev bixwe ye.

(Têgeha/qewrama "Welîyullah/Dostê Allah" têgeheke Qur'anê ye, lê ji terefê însanan ve herî zêde hatîye texrîf kirin. Hin kesên ku Kitêb û sunnet a ku Qur'anê rave dike, avêtine pişta guhê xwe û dînê xwe bi rawêjan/bi sawan û bi zenna û bi menqîbeyan/bi hîkayatan û bi xûrafeyan hîn dibin li cem xwe wiha difikirin ku; ew kesên navê wan dostê Allah/welîyê Xwedê ne ewana bi ayînên kevneşopî ya bi taybet û nepen/xafî hatine pîrozandin û hin rêbazên wiha bikar tînin ku bitenê pir kêm însan bi vê dizanin û bi alemên cuda re di têkilîyê de ne. Ev ayeta pîroz; bi awayekî vikîvekirî bi me dide zanîn ku 'Dostê Allah/Welîyullah' kî ne: Kesên ku îmân bi Allah anîye û xwedî teqwa ye û xwe jê diparêze ha ew bixwe welîyullah e, dostê Allah e. Her mumînek, bi qasî îmân û teqwa xwe ji vê welayetê/ji vê dostanîyê dibe xwedî par. Tesewwura "Dostê Allah" ku me di rêzên jor de teqdîm kir; ew kesên wekî sêhrbaz û falavêj û erraf û rêşaşên weke van ku li hemberî îslâmê nikarin qet tu heyînekî nîşan bidin, xebata wan e da ku bi têgeha "Dostê Allah" bikaribin xwe di nav civaka îslâmê de bigirin.)

**65.** Gotinên muşrîkan (ya ji bo derewandin û tinazkirin û kêmxistina te dibêjin) bila te xemgîn neke. Bêguman hemû îzzet aîdê Allah e. Allah, (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**66.** Baldar bin/Dîqat bikin! Li erd û esmanan her kî hebe aîdê Allah in. Ew ên ji xeynî Allah ji hinên din re dûa dikin; (bi rastî) nadin pey wan şirîkên xwe jî. Ew bi tenê didin pey zennê û ew bi texmînan tevdigerin.

(Der heqê lêgerîna heqîqetê ya li derê wehîyê de ku "dûvketina zennê" ye. Bnr. 10/ Yûnus, 36.)

أَلَٓا اِنَّ اَوْلِيَٓاءَ اللّٰهِ لَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَۚ ﴿٦٢﴾
اَلَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَكَانُوا يَتَّقُونَۜ ﴿٦٣﴾ لَهُمُ الْبُشْرٰى
فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَفِي الْاٰخِرَةِۜ لَا تَبْد۪يلَ لِكَلِمَاتِ اللّٰهِۜ
ذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظ۪يمُۜ ﴿٦٤﴾ وَلَا يَحْزُنْكَ قَوْلُهُمْۢ
اِنَّ الْعِزَّةَ لِلّٰهِ جَم۪يعاًۜ هُوَ السَّم۪يعُ الْعَل۪يمُ ﴿٦٥﴾ اَلَٓا اِنَّ لِلّٰهِ
مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَمَنْ فِي الْاَرْضِۜ وَمَا يَتَّبِعُ الَّذ۪ينَ
يَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ شُرَكَٓاءَۜ اِنْ يَتَّبِعُونَ
اِلَّا الظَّنَّ وَاِنْ هُمْ اِلَّا يَخْرُصُونَ ﴿٦٦﴾ هُوَ الَّذ۪ي جَعَلَ
لَكُمُ الَّيْلَ لِتَسْكُنُوا ف۪يهِ وَالنَّهَارَ مُبْصِراًۜ اِنَّ
ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَسْمَعُونَ ﴿٦٧﴾ قَالُوا اتَّخَذَ اللّٰهُ
وَلَداً سُبْحَانَهُۜ هُوَ الْغَنِيُّۜ لَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِۜ
اِنْ عِنْدَكُمْ مِنْ سُلْطَانٍ بِهٰذَاۜ اَتَقُولُونَ عَلَى اللّٰهِ
مَا لَا تَعْلَمُونَ ﴿٦٨﴾ قُلْ اِنَّ الَّذ۪ينَ يَفْتَرُونَ عَلَى اللّٰهِ الْكَذِبَ
لَا يُفْلِحُونَۜ ﴿٦٩﴾ مَتَاعٌ فِي الدُّنْيَا ثُمَّ اِلَيْنَا مَرْجِعُهُمْ ثُمَّ
نُذ۪يقُهُمُ الْعَذَابَ الشَّد۪يدَ بِمَا كَانُوا يَكْفُرُونَ ﴿٧٠﴾

**67.** Ew ê ji bo hûn bigihîjin sikûnetê/îstîrahet bikin şev û ji bo (hûn îşê xwe pêk bînin) roj ji bo we kiriye ronahîker ew e. Bêguman di vêya de ji bo qewmekî bihîstkar re ayet hene.

**68.** Gotin: "Allah ji xwe re zarok çêkiriye." Ew munezzeh e! Ew (her tişt muhtacê wî ye lê ew ne hewcedarê tu kesî) Xaniy ye. Hemû tiştên li erd û esmanan aîdê Allah in. (Di wê îdîaya ku dibêjin 'Allah ji xwe re zarok çêkiriye' de) li cem we qet tu delîl tune. Nexwe hûn di heqê Allah de, tiştê ku pê nizanin dibêjin?

**69.** Bibêje: "Ew ên di heqê Allah de bi lihevanîna derewan bêbextîyan dikin nagihîjin xelasîyê."

**70.** Wê demeke hindik ji dinyayê feyde bigirin û paşê vegera wan bi bal me ve ye. Piştre ji ber kufra wan ve em ê ezabekî biêş û jan bi wan bitamînin.

وَاتْلُ عَلَيْهِمْ نَبَاَ نُوحٍۢ اِذْ قَالَ لِقَوْمِهٖ يَا قَوْمِ اِنْ كَانَ كَبُرَ عَلَيْكُمْ
مَقَامٖى وَتَذْكٖيرٖى بِاٰيَاتِ اللّٰهِ فَعَلَى اللّٰهِ تَوَكَّلْتُ فَاَجْمِعُٓوا اَمْرَكُمْ
وَشُرَكَٓاءَكُمْ ثُمَّ لَا يَكُنْ اَمْرُكُمْ عَلَيْكُمْ غُمَّةً ثُمَّ اقْضُٓوا اِلَيَّ
وَلَا تُنْظِرُونِ ﴿٧١﴾ فَاِنْ تَوَلَّيْتُمْ فَمَا سَاَلْتُكُمْ مِنْ اَجْرٍۜ اِنْ اَجْرِيَ
اِلَّا عَلَى اللّٰهِۙ وَاُمِرْتُ اَنْ اَكُونَ مِنَ الْمُسْلِمٖينَ ﴿٧٢﴾ فَكَذَّبُوهُ
فَنَجَّيْنَاهُ وَمَنْ مَعَهُ فِى الْفُلْكِ وَجَعَلْنَاهُمْ خَلَٓائِفَ وَاَغْرَقْنَا
الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَاۚ فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُنْذَرٖينَ ﴿٧٣﴾
ثُمَّ بَعَثْنَا مِنْ بَعْدِهٖ رُسُلًا اِلٰى قَوْمِهِمْ فَجَٓاؤُ۫هُمْ بِالْبَيِّنَاتِ
فَمَا كَانُوا لِيُؤْمِنُوا بِمَا كَذَّبُوا بِهٖ مِنْ قَبْلُۜ كَذٰلِكَ نَطْبَعُ
عَلٰى قُلُوبِ الْمُعْتَدٖينَ ﴿٧٤﴾ ثُمَّ بَعَثْنَا مِنْ بَعْدِهِمْ مُوسٰى وَهٰرُونَ
اِلٰى فِرْعَوْنَ وَمَلَا۬ئِهٖ بِاٰيَاتِنَا فَاسْتَكْبَرُوا وَكَانُوا قَوْمًا مُجْرِمٖينَ ﴿٧٥﴾
فَلَمَّا جَٓاءَهُمُ الْحَقُّ مِنْ عِنْدِنَا قَالُٓوا اِنَّ هٰذَا لَسِحْرٌ مُبٖينٌ ﴿٧٦﴾ قَالَ
مُوسٰٓى اَتَقُولُونَ لِلْحَقِّ لَمَّا جَٓاءَكُمْۜ اَسِحْرٌ هٰذَاۜ وَلَا يُفْلِحُ السَّاحِرُونَ ﴿٧٧﴾
قَالُٓوا اَجِئْتَنَا لِتَلْفِتَنَا عَمَّا وَجَدْنَا عَلَيْهِ اٰبَٓاءَنَا وَتَكُونَ
لَكُمَا الْكِبْرِيَٓاءُ فِى الْاَرْضِۜ وَمَا نَحْنُ لَكُمَا بِمُؤْمِنٖينَ ﴿٧٨﴾

**71.** Ji wan re xebera Nûh bixwîne. Bi bîr bîne ku wî ji qewmê xwe re (wiha) gotibû: "Gelî qewmê min! Eger mayîna min di nav we de û şîreta min a bi ayetên Allah bi we giran bê, bizanibin ku min xwe sipartîye Allah. Êdî hûn û şirîkên xwe li hev bicivin û (der heqê min de) qerara xwe bidin. (Karên ku hûn der heqê min de bikin) bila ji we re nebe derd. Paşê qet nesekinin û qerara xwe li ser min tetbîq bikin/çav li min venekin."

(Ji bo helwesta îmanî ya li hemberî tehdîdên ehlê şirkê bnr. 6/En'am, 82.)

**72.** "Eger hûn rû vegerînin, min ji bo vê (dawetê) ji we qet tu heqekî nexwestîye. Dê heqê min bi tenê Allah bide û ez bi bûyîna ji muslîman (ew evdên şirkê diterikînin û bi aqîda tewhîdê berê xwe didin Allah) hatime emirkirin."




**73.** Wî derewandin/tekzîb kirin. Me jî ew û ew ên bi wî re di keştîyê de bûn xelas kirin û ew (li ser rûyê erdê) kirin xelîfe. Me ew ên ayetên me derewandin jî di avê de xeniqand. De binêre ka aqûbeta wan ên hatine hişyarkirin çawa bûye!

**74.** Piştre li pey wî me gelek pêxember ji qewmên wan re şandin. (Pêxemberan) ji qewmên xwe re beyyînat/delîlên eşkere anîbûn. Lê tiştê ku berê de derewandibûn pê îmân nedianîn! Em qelbê wan ên ji hedê xwe borîne a wiha mohr dikin.

**75.** Paşê me piştî wan Mûsa û Hârûn bi ayetên xwe ji Firewn û giregirên wî re şandin. Lê ewana (li dij ayet û pêxemberên me) quretî kirin. Ew, qewmekî mucrîm û gunehkar bûn.

**76.** Dema ji wan re ji bal me ve heq hat, gotibûn: "Bêguman ev sêhreke eşkere ye."

**77.** Mûsa jî gotibû: "Dema ku heq ji we re hat, hûn dibêjin 'Ev sêhr e?' Halbukî sêhrbaz nagihîjin felahê/xelasîyê."

**78.** (Wan jî) gotibûn: "Qey ji bo ku ji wê rêya me bav û kalên xwe li serê dîtin tu me vegerînî û li ser rûyê erdê mezinayî/otorîte ji we herduyan tenê re be ji me re hatî? Em bi we herduyan jî îmân naynin."

(Sûcdarkirina dawet û dawetvanên tewhîdê bi menfeatperestî û parvekerî/cudakerî ya yekîtîya welat an neteweyê û îfsadkirina dîn, herûdaîm taybetîya hevpar a Firewnan e. (Bnr.7/A'raf, 110, 123; 40/Mu'min, 26))

وَقَالَ فِرْعَوْنُ ائْتُونِي بِكُلِّ سَاحِرٍ عَلِيمٍ ﴿٧٩﴾ فَلَمَّا
جَٓاءَ السَّحَرَةُ قَالَ لَهُمْ مُوسٰٓى اَلْقُوا مَٓا اَنْتُمْ مُلْقُونَ ﴿٨٠﴾ فَلَمَّٓا
اَلْقَوْا قَالَ مُوسٰى مَا جِئْتُمْ بِهِ السِّحْرُۜ اِنَّ اللّٰهَ سَيُبْطِلُهُۜ اِنَّ اللّٰهَ
لَا يُصْلِحُ عَمَلَ الْمُفْسِدِينَ ﴿٨١﴾ وَيُحِقُّ اللّٰهُ الْحَقَّ بِكَلِمَاتِهِ
وَلَوْ كَرِهَ الْمُجْرِمُونَ ﴿٨٢﴾ فَمَٓا اٰمَنَ لِمُوسٰٓى اِلَّا ذُرِّيَّةٌ مِنْ قَوْمِهِ
عَلٰى خَوْفٍ مِنْ فِرْعَوْنَ وَمَلَا۬ئِهِمْ اَنْ يَفْتِنَهُمْۜ وَاِنَّ فِرْعَوْنَ لَعَالٍ
فِي الْاَرْضِۚ وَاِنَّهُ لَمِنَ الْمُسْرِفِينَ ﴿٨٣﴾ وَقَالَ مُوسٰى يَا قَوْمِ اِنْ كُنْتُمْ
اٰمَنْتُمْ بِاللّٰهِ فَعَلَيْهِ تَوَكَّلُٓوا اِنْ كُنْتُمْ مُسْلِمِينَ ﴿٨٤﴾ فَقَالُوا
عَلَى اللّٰهِ تَوَكَّلْنَاۚ رَبَّنَا لَا تَجْعَلْنَا فِتْنَةً لِلْقَوْمِ الظَّالِمِينَۙ ﴿٨٥﴾
وَنَجِّنَا بِرَحْمَتِكَ مِنَ الْقَوْمِ الْكَافِرِينَ ﴿٨٦﴾ وَاَوْحَيْنَٓا
اِلٰى مُوسٰى وَاَخِيهِ اَنْ تَبَوَّءَا لِقَوْمِكُمَا بِمِصْرَ بُيُوتًا وَاجْعَلُوا
بُيُوتَكُمْ قِبْلَةً وَاَقِيمُوا الصَّلٰوةَۜ وَبَشِّرِ الْمُؤْمِنِينَ ﴿٨٧﴾ وَقَالَ مُوسٰى
رَبَّنَٓا اِنَّكَ اٰتَيْتَ فِرْعَوْنَ وَمَلَاَهُ زِينَةً وَاَمْوَالًا فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۙ
رَبَّنَا لِيُضِلُّوا عَنْ سَبِيلِكَۚ رَبَّنَا اطْمِسْ عَلٰٓى اَمْوَالِهِمْ
وَاشْدُدْ عَلٰى قُلُوبِهِمْ فَلَا يُؤْمِنُوا حَتّٰى يَرَوُا الْعَذَابَ الْاَلِيمَ ﴿٨٨﴾

**79.** Firewn got: “Ji min re hemû sêhrbâzên zana bînin.”

**80.** Dema sêhrbaz hatin Mûsa got: “De bavêjin (em bibînin) ya ku hûn ê bavêjin.”

**81.** Dema wan (tiştên destê xwe de) avêtin, Mûsa got: “Ev tiştê ku hûn dikin sêhr e. Bêguman Allah dê wê sêhrê betal bike. (Lewre) Allah, karê mufsîdan islah nake/nabe serî.”

**82.** Gunehkarên mucrîm nexwazin jî Allah, bi kelîmeyên xwe wê heqîyê derêxe holê.

**83.** Di nav qewmê wî de ji komek xortan/ciwanan pê ve tu kes bi Mûsa îmân neanî. (Ewan xortan jî) ligel ditirsîyan ku Firewn û giregirên wî wê li wan tehdayî/îşkence bikin jî îmân anîbûn. Lewre Firewn li ser rûyê erdê despotekî pirzêde ser xwe de çûbû û qure bû.

(Ji bo tiştên ku Allah (ac) der heqê piranî/zehfayî û kêmjimarî/hindikayî de qotîye bnr. 11/Hûd, 40.)

**84.** Mûsa got: “Gelî qewmê min! Eger we bi Allah îmân anîbe û hûn ji dil teslîm bubin bi tenê tewekkulê wî bikin.”

**85.** (Li ser vêya wan jî) gotibûn: “Me tewekkulê Allah kir/me xwe sipartîye Allah.” “Rabbê me! Me ji bo qewmekî zalim neke fitne. (Eger serdestê me bibin wê zen bikin ku yê li ser rêya heqîyê ew in. Bi vê awayê em ê ji bo wan bibin fitne.)”

**86.** “Û me bi rahmeta xwe ji qewmê kafir xelas bike.”

**87.** Me ji Mûsa û ji birayê wî re wisa wehîy kiribû: “Ji bo qewmê xwe li Misrê malan amade bikin. Malên xwe bikin qiblegeh (ên ku di nava wan de nimêj tê kirin). Nimêja xwe rasterast bikin. Mizgînê bidin mumînan.”

**88.** Mûsa got: “Rabbê me! Te di heyata dinyayê de zînet û emwal (malên pir) da Firewn û giregirên wî. Rabbê me! Ma te ev ji bo ku ji rêya te vegerînin (daye wan)? Rabbê me! Malê wan tune bike û tengezarî bide qelbê wan ku; hetanî ezaba biêş û jan bibînin îmân neynin.”

قَالَ قَدْ اُجٖيبَتْ دَعْوَتُكُمَا فَاسْتَقٖيمَا وَلَا تَتَّبِعَآنِّ سَبٖيلَ
الَّذٖينَ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٨٩﴾ وَجَاوَزْنَا بِبَنٖٓى اِسْرَٓائٖلَ الْبَحْرَ فَاَتْبَعَهُمْ
فِرْعَوْنُ وَجُنُودُهُ بَغْيًا وَعَدْوًاۜ حَتّٰٓى اِذَٓا اَدْرَكَهُ الْغَرَقُۙ
قَالَ اٰمَنْتُ اَنَّهُ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا الَّذٖٓى اٰمَنَتْ بِهٖ بَنُوٓا اِسْرَٓائٖلَ وَاَنَا۬
مِنَ الْمُسْلِمٖينَ ﴿٩٠﴾ آٰلْـٰٔنَ وَقَدْ عَصَيْتَ قَبْلُ وَكُنْتَ
مِنَ الْمُفْسِدٖينَ ﴿٩١﴾ فَالْيَوْمَ نُنَجّٖيكَ بِبَدَنِكَ لِتَكُونَ لِمَنْ
خَلْفَكَ اٰيَةًۜ وَاِنَّ كَثٖيرًا مِنَ النَّاسِ عَنْ اٰيَاتِنَا لَغَافِلُونَ ﴿٩٢﴾
وَلَقَدْ بَوَّاْنَا بَنٖٓى اِسْرَٓائٖلَ مُبَوَّاَ صِدْقٍ وَرَزَقْنَاهُمْ مِنَ الطَّيِّبَاتِۚ
فَمَا اخْتَلَفُوا حَتّٰى جَٓاءَهُمُ الْعِلْمُۜ اِنَّ رَبَّكَ يَقْضٖى بَيْنَهُمْ يَوْمَ
الْقِيٰمَةِ فٖيمَا كَانُوا فٖيهِ يَخْتَلِفُونَ ﴿٩٣﴾ فَاِنْ كُنْتَ فٖى شَكٍّ
مِمَّٓا اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكَ فَسْـَٔلِ الَّذٖينَ يَقْرَؤُنَ الْكِتَابَ مِنْ قَبْلِكَۚ
لَقَدْ جَٓاءَكَ الْحَقُّ مِنْ رَبِّكَ فَلَا تَكُونَنَّ مِنَ الْمُمْتَرٖينَۙ ﴿٩٤﴾
وَلَا تَكُونَنَّ مِنَ الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِ اللّٰهِ فَتَكُونَ
مِنَ الْخَاسِرٖينَ ﴿٩٥﴾ اِنَّ الَّذٖينَ حَقَّتْ عَلَيْهِمْ كَلِمَتُ رَبِّكَ
لَا يُؤْمِنُونَۙ ﴿٩٦﴾ وَلَوْ جَٓاءَتْهُمْ كُلُّ اٰيَةٍ حَتّٰى يَرَوُا الْعَذَابَ الْاَلٖيمَ ﴿٩٧﴾

**89.** (Allah) got: “Dûayên we her duyan jî qebûl bûn. Nexwe hûn rasterast bin û nedin pey nezanan.”

**90.** Mûsa, Benî Îsraîl ji behrê derbas kir. Firewn û leşkerên xwe bi harîtî û bi dijminahî ketin pey wan. Dema Firewn fêm kir ku wê bixeniqe (wiha) gotibû: “Min îmân anî ku ji xeynî wî îlâhê Benî Îsraîl pê îmân tînin pê ve qet tu îlâh tune. Û ez jî ji muslîman/ji wan evdên ku terka şirkê kirine û li ser tewhîdê berê xwe dane Allah im.”

**91.** Erê ma vêga (te îmân anî)? (Hal ev e ku) te berê îsyan dikir û ji mufsîdan bûyî.

**92.** Îro em ê laşe te/termê te xelas bikin da ku tu ji yên pey xwe re bibî îbret. Bêguman pirên însanan ji ayetên me xafil in.

**93.** Sond be, me Benî Îsraîl li welatekî xwezî lê hatî bi cih kiribû û bi xwarinên paqij me ew riziqandibûn. Heta ku ji wan re îlim nehatibû neketin îxtîlafê. Bêguman roja qiyametê Rabbê te li ser mijarên ku tê de ketine îxtîlafê wê di navbera wan de hukmê xwe bide.

**94.** Eger di tiştên ku me ji te re nazil kiriye de gumanê dikî, ji wan ên ku berî te Kitêb xwendinê bipirse. Sond be, heq ji te re ji Rabbê te hatîye. Êdî nebe ji gumandaran.

**95.** Û nebe tu bibî ji wan ên ku ayetên Allah diderewînin. Nexwe wê tu bibî ji yên xisirî/bi ber ketî.

**96.** Bi rastî ew ên kelîmeya/hukmê Rabbê te di aleyha wan de pêk hatîye, qet îmân naynin.

**97.** Ji wan re hemû ayet hatibin jî (encam naguhere). Heta ku ezabê biêş û jan bibînin (îmân naynin).

فَلَوْلَا كَانَتْ قَرْيَةٌ اٰمَنَتْ فَنَفَعَهَٓا اٖيمَانُهَٓا اِلَّا قَوْمَ يُونُسَۜ
لَمَّٓا اٰمَنُوا كَشَفْنَا عَنْهُمْ عَذَابَ الْخِزْيِ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا
وَمَتَّعْنَاهُمْ اِلٰى حٖينٍ ﴿٩٨﴾ وَلَوْ شَٓاءَ رَبُّكَ لَاٰمَنَ مَنْ فِي الْاَرْضِ
كُلُّهُمْ جَمٖيعًاۜ اَفَاَنْتَ تُكْرِهُ النَّاسَ حَتّٰى يَكُونُوا مُؤْمِنٖينَ ﴿٩٩﴾
وَمَا كَانَ لِنَفْسٍ اَنْ تُؤْمِنَ اِلَّا بِاِذْنِ اللّٰهِۜ وَيَجْعَلُ الرِّجْسَ
عَلَى الَّذٖينَ لَا يَعْقِلُونَ ﴿١٠٠﴾ قُلِ انْظُرُوا مَاذَا فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِۜ وَمَا تُغْنِي الْاٰيَاتُ وَالنُّذُرُ عَنْ قَوْمٍ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿١٠١﴾ فَهَلْ
يَنْتَظِرُونَ اِلَّا مِثْلَ اَيَّامِ الَّذٖينَ خَلَوْا مِنْ قَبْلِهِمْۜ قُلْ فَانْتَظِرُٓوا
اِنّٖي مَعَكُمْ مِنَ الْمُنْتَظِرٖينَ ﴿١٠٢﴾ ثُمَّ نُنَجّٖي رُسُلَنَا وَالَّذٖينَ
اٰمَنُوا كَذٰلِكَۚ حَقًّا عَلَيْنَا نُنْجِ الْمُؤْمِنٖينَ ﴿١٠٣﴾ قُلْ يَٓا اَيُّهَا
النَّاسُ اِنْ كُنْتُمْ فٖي شَكٍّ مِنْ دٖيني فَلَٓا اَعْبُدُ الَّذٖينَ تَعْبُدُونَ
مِنْ دُونِ اللّٰهِ وَلٰكِنْ اَعْبُدُ اللّٰهَ الَّذٖي يَتَوَفّٰيكُمْۚ وَاُمِرْتُ
اَنْ اَكُونَ مِنَ الْمُؤْمِنٖينَۙ ﴿١٠٤﴾ وَاَنْ اَقِمْ وَجْهَكَ لِلدّٖينِ حَنٖيفًاۚ
وَلَا تَكُونَنَّ مِنَ الْمُشْرِكٖينَ ﴿١٠٥﴾ وَلَا تَدْعُ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
مَا لَا يَنْفَعُكَ وَلَا يَضُرُّكَۚ فَاِنْ فَعَلْتَ فَاِنَّكَ اِذًا مِنَ الظَّالِمٖينَ ﴿١٠٦﴾

**98.** Ji xeynî qewmê Yûnus, xwezî qewmek hebûya (dema ku ezab hat) û berî ezab nedîtine bi îmanekî ku jê feyde bibînin îmân bianîna! Dema ku wan îmân anîn me di heyata dinyayê de ezabê rezîlîyê ji ser wan rakir. Heta demeke diyarkirî me îmkan da wan ku (ji heyatê) feyde wergirin.

**99.** Eger Rabbê te daxwaz bikira wê hemû kesên li ser rûyê erdê îmân bianîna. (Digel ku Allah wiha nekiriye) qey tu yê li însanan zorê bikî heta ku îmân bînin?

**100.** Heta ku destûra Allah tune be, tu kes nikare îmân bîne. (Allah) ew ên ku aqil nakin wan mehkûmê ricsê/pîsîtîyê/ezabê dike. (An jî ricsê/pîsîtîyê li ser wan ên ku aqil nagirin re dike lod.)

**101.** Bibêje: “Li tiştên li erd û esmanan binêrin û bifikirin! Lewre ayet/delîl û hişyarkirin (a Rasûlan) feyde nade wan qewmên îmân naynin.”

**102.** Ma ew li hêvîya wan rojên (xerab ku hatibû) serê qewmên berî wan pê ve li hêvîya tiştekî din in? Bibêje: “Bisekinin, ez jî bi we re sekinî me.”

**103.** (Ew ezaba ku li hêvîyê mane teqez wê bê serê wan.) Piştre em pêxemberê xwe û (mumînên bi wan re ne) xelas dikin. Ha weke vê xelaskirina (hemû) mumînan li ser me heq e.

**104.** Bibêje: “Gelî însanan! Eger hûn der heqê dînê min de di gumanê de bin (vêya bizanibin ku;) ez ji bo ew ên hûn ji xeynî Allah ji wan re îbadet dikin re îbadetê nakim. Ez ji wî Allahê ku we dimirîne re îbadet dikim. Û li min hate fermankirin ku ez bibim ji mumînan. (Va ez ji îlâhên we re qebû dixwazim/meydan dixwazim. Eger hêza wan hebe ji ber ku ez îbadetê wan nakim, de bila min ceza bikin, em bibînin.)”

**105.** Û bi henîftî berê xwe bide dîn! Nebe tu bibî ji muşrîkan!

**106.** Ji xeynî Allah dûa/lavayî ji wan heyînên ku kar û zerara wan nagihîje te neke. Eger tu wisa bikî bêguman tu yê bibî ji zaliman/ji muşrîkan.

(Ayetên 104-106. ji Rasûlullah (ass) re emrê bûyîna li ser tewhîdê û îlana vê rewşê dike. Eslê tewhîdê evdîtî ye û eslê evdîtîyê îbadet e û eslê îbadetê jî dûa ye. Ew kesên ku dev ji Allah berdin û dûa/lavayî ji heyînên ku ne dikarin bixuliqînin û birizqînin û mirin û nexweşînan ji wan dûr bigirin re bikin, dibin ji zaliman/ji muşrîkan. Welew ew kes pêxember bixwe jî be, rewş ev e.)

وَاِنْ يَمْسَسْكَ اللّٰهُ بِضُرٍّ فَلَا كَاشِفَ لَهُٓ اِلَّا هُوَۚ وَاِنْ يُرِدْكَ بِخَيْرٍ فَلَا رَٓادَّ
لِفَضْلِهٖۜ يُصٖيبُ بِهٖ مَنْ يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِهٖۜ وَهُوَ الْغَفُورُ الرَّحٖيمُ ﴿١٠٧﴾ قُلْ
يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ قَدْ جَٓاءَكُمُ الْحَقُّ مِنْ رَبِّكُمْۚ فَمَنِ اهْتَدٰى فَاِنَّمَا يَهْتَدٖي
لِنَفْسِهٖۚ وَمَنْ ضَلَّ فَاِنَّمَا يَضِلُّ عَلَيْهَاۚ وَمَٓا اَنَا عَلَيْكُمْ بِوَكٖيلٍۜ ﴿١٠٨﴾ وَاتَّبِعْ
مَا يُوحٰٓى اِلَيْكَ وَاصْبِرْ حَتّٰى يَحْكُمَ اللّٰهُۚ وَهُوَ خَيْرُ الْحَاكِمٖينَ ﴿١٠٩﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ

الٓرٰ كِتَابٌ اُحْكِمَتْ اٰيَاتُهُ ثُمَّ فُصِّلَتْ مِنْ لَدُنْ حَكٖيمٍ خَبٖيرٍۙ ﴿١﴾
اَلَّا تَعْبُدُٓوا اِلَّا اللّٰهَۜ اِنَّنٖي لَكُمْ مِنْهُ نَذٖيرٌ وَبَشٖيرٌۙ ﴿٢﴾ وَاَنِ اسْتَغْفِرُوا
رَبَّكُمْ ثُمَّ تُوبُٓوا اِلَيْهِ يُمَتِّعْكُمْ مَتَاعًا حَسَنًا اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّى
وَيُؤْتِ كُلَّ ذٖي فَضْلٍ فَضْلَهُۜ وَاِنْ تَوَلَّوْا فَاِنّٖٓي اَخَافُ عَلَيْكُمْ عَذَابَ
يَوْمٍ كَبٖيرٍ ﴿٣﴾ اِلَى اللّٰهِ مَرْجِعُكُمْۚ وَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدٖيرٌ ﴿٤﴾
اَلَٓا اِنَّهُمْ يَثْنُونَ صُدُورَهُمْ لِيَسْتَخْفُوا مِنْهُۜ اَلَا حٖينَ يَسْتَغْشُونَ
ثِيَابَهُمْۙ يَعْلَمُ مَا يُسِرُّونَ وَمَا يُعْلِنُونَۚ اِنَّهُ عَلٖيمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٥﴾

**107.** Eger Allah zerarekê bîne serê te, ji wî pê ve kes tune ku wê zerarê ji ser te rake. Ji bo te xêrek daxwaz bike, kes tune ku rê li ber lutfa wî bigire. Ew ji kîjan evdê xwe re bixwaze (lutf û kerema xwe) digihîjînê wî. Allah (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**108.** Bibêje: "Gelî însanan! Muheqeq ji we re ji Rabbê we heq hatîye. Her kî hîdayet bibîne (bide pey heqîyê) ji bo xwe hîdayet dîtîye. Her kî jî (bi rû vegerandina heqîyê) bixerife di aleyha xwe de xerifîyê. Ez li ser we ne wekîl im (ku we bi zorahî ji rêşaşîtîyê biparêzim û berê we bidim bal bi heqîyê ve).

**109.** Bide pey tiştê ku ji te re wehîy bûye û heta Allah (di navbera we de) hukim bide sebir bike. Ew, herî bixêrtirê hakiman e.



## 11. SÛREYA HÛD

*(Sûreya Hûd, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sed û bîst û sê (123) ayet e. )*

*Di Qur'anê de sûreya yazdehem e. Ayetên 50. heta 60. behsa Hûd (as) û qewmê wî dike. Ji ber vê yekê wek sûreya Hûd hatîye navandin. Ev sûre wekî wê sûreya berîya xwe mijarên tewhîd û pêxembertî û vejîna piştî mirinê û hesab û ceza ku evana bi tevahî di eslê xwe de esasên îslamê ne vedihewîne. Di vê sûreyê de tofana Nûh cihekî berfireh digire. Wekî din qiseyên Salih û Îbrahîm û Lût û Şûayb û Mûsa (asm) jî tê vegotin. Esasên der heqê aqîdeya tewhîdê û vejîna piştî mirinê û mijarên cezadayînê jî di sûreyê de cih girtîye. Rasûlullah (ass) der barê vê sûreyê de wiha gotîye: "Sûreya Hûd, ez îxtîyar kirim." (Tirmizî, Tefsîr, 57 û Hakîm, Mûstedrek, c. 2, sh. 374)*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Elif, Lâm, Râ. (Ev,) Kitêbeke wisan e ku ayetên wê muhkem in, paşê ji alîyê Allahê (xwedî hukim û hikmet) Hakîm û (ji her tiştî agahdar) Xebîr ve bi teferûet hatîye beyankirin.
(Ji bo hikmetên ku Qur'ana Kerîm Kitêbeke mufesselbûyî/kitekitbûyî ye, bnr. 6/En'âm, 55.)

**2.** (Ev ayetên ji hêla/ji alîyê Allah ve muhkemkirî û bi teferûet beyankirî ne, sebebê wê ev e ku) hûn ji Allah pê ve îbadetê tiştekî din nekin. Bêguman ez ji terefê wî (Allah) ve ji bo we bi hişyarkerî û mizgînvanî hatime şandin.
(Ji bo meqseda nazilkirina Kitêbê bnr. 4/Nîsa, 105. Ji bo hikmetên ku Qur'ana Kerîm Kitêbeke mufesselbûyî ye, bnr. 6/En'âm, 55.)

**3.** Ji Rabbê xwe mexfîretê bixwazin û paşê jê re tobe bikin. (Di muqabilê vê de) heta demeke diyarkirî wê bi awayekî rind heyata we bi xweşî û bi feyde bidomîne û dê ji lutf û kerema xwe bide çi kesê xwedî fezîlet in. Eger hûn rû vegerînin, bêguman ez der heqê we de ji ezabê rojeke mezin ditirsim.

**4.** Vegera we bi bal Allah ve ye. Ew qadirê her tiştî ye.

**5.** Baldar bin/Dîqat bikin! Ew xwe ji bo ku xwe wî veşêrin singa xwe ditewînin (ji heqîyê rû vedigerînin). Baldar bin/Dîqat bikin! Ew (Allah) dema ku ew xwe li kincên xwe dinixûmînin û bi tiştên vedişêrin û bi tiştên eşkere dikin jî dizane. Bêşik ew (Allah), bi ya ku di singan de veşartî ye, dizane.



وَمَا مِنْ دَٓابَّةٍ فِي الْاَرْضِ اِلَّا عَلَى اللّٰهِ رِزْقُهَا وَيَعْلَمُ مُسْتَقَرَّهَا
وَمُسْتَوْدَعَهَاۜ كُلٌّ ف۪ي كِتَابٍ مُب۪ينٍ ﴿٦﴾ وَهُوَ الَّذ۪ي خَلَقَ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ ف۪ي سِتَّةِ اَيَّامٍ وَكَانَ عَرْشُهُ عَلَى الْمَٓاءِ
لِيَبْلُوَكُمْ اَيُّكُمْ اَحْسَنُ عَمَلًاۜ وَلَئِنْ قُلْتَ اِنَّكُمْ
مَبْعُوثُونَ مِنْ بَعْدِ الْمَوْتِ لَيَقُولَنَّ الَّذ۪ينَ كَفَرُٓوا
اِنْ هٰذَٓا اِلَّا سِحْرٌ مُب۪ينٌ ﴿٧﴾ وَلَئِنْ اَخَّرْنَا عَنْهُمُ الْعَذَابَ
اِلٰٓى اُمَّةٍ مَعْدُودَةٍ لَيَقُولُنَّ مَا يَحْبِسُهُۜ اَلَا يَوْمَ يَأْت۪يهِمْ لَيْسَ
مَصْرُوفًا عَنْهُمْ وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِه۪ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٨﴾
وَلَئِنْ اَذَقْنَا الْاِنْسَانَ مِنَّا رَحْمَةً ثُمَّ نَزَعْنَاهَا مِنْهُۚ اِنَّهُ
لَيَؤُ۫سٌ كَفُورٌ ﴿٩﴾ وَلَئِنْ اَذَقْنَاهُ نَعْمَٓاءَ بَعْدَ ضَرَّٓاءَ
مَسَّتْهُ لَيَقُولَنَّ ذَهَبَ السَّيِّـَٔاتُ عَنّ۪يۜ اِنَّهُ لَفَرِحٌ فَخُورٌۙ ﴿١٠﴾
اِلَّا الَّذ۪ينَ صَبَرُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِۜ اُو۬لٰٓئِكَ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ
وَاَجْرٌ كَب۪يرٌ ﴿١١﴾ فَلَعَلَّكَ تَارِكٌ بَعْضَ مَا يُوحٰٓى اِلَيْكَ وَضَٓائِقٌ
بِه۪ صَدْرُكَ اَنْ يَقُولُوا لَوْلَٓا اُنْزِلَ عَلَيْهِ كَنْزٌ اَوْ جَٓاءَ
مَعَهُ مَلَكٌۜ اِنَّمَٓا اَنْتَ نَذ۪يرٌۜ وَاللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ وَك۪يلٌ ﴿١٢﴾

**6.** Li ser rûyê erdê qet zindîyek/jîndarek tune ku rizqê wî ne aîdê Allah be. Ew (Allah), bi cihê sekna wan û bi cihê ku tê de bi muweqetî dimînin jî dizane. Hemû di Kitêbeke eşkere de nivîsandî ne.

**7.** Ji bona ku we îmtîhan bike/derêxe holê ka hûn kîjan amelên xweşik dikin, ew ê erd û esman di şeş rojan de xuliqandîye ew (Allah) e. Wê demê arş li ser avê bû. Bi rastî eger tu ji wan re bibêjî, hûn ê jî piştî mirinê dîsa bên vejandin, wê kafir wiha bêjin: “Ev sêhreke vikîvekirî ye”.

(Bnr. 38/Sâd, 27)

**8.** Eger em heta demeke diyarkirî ezab ji ser wan bidin paş, teqez wê bibêjin: “Ka çi ye nahêle ku ew (ezab) were?” Baldar bin/Dîqat bikin! Roja ku ezab were carekê din ji wan nayê zivirandin. Û ew tiştê tinazê xwe pê dikin wê wan hawîrdor dorpêç bike.

**9.** Eger em ji alîyê xwe ve rahmetekê bi însanan bidin tamkirin û paşê vêya ji wan bikşînin û bistînin, ew hema (vedigere û) dibe nankorekî bêhêvî.

**10.** Piştî tengezarîyekî eger em nîmetekê bi wî bitamînin wê bibêje: “Tengezarî/xerabî ji min borî/derbas bûn.” Bêguman ew xwedî (exlaqê) rûdîtîyê û quretîyê ye.

**11.** Lê ew ên (li dij tengasîyan de) sebir dikin (di rewşa nîmetan de şikurdar in) û amelên salih dikin ne tê de ne.

**12.** Ji ber ku gotine: “De bila xezîneyek jê re bihata daxistin an jî melâîket pê re bihatana” ma qey wê singa te teng bibe û tu yê dev (ji vegotina) qismek ji wan tiştên ku ji te re wehîy bûne berdî? Tu, enceq hişyarkerek î. Allah, wekîlê li ser her tiştî ye.

اَمْ يَقُولُونَ افْتَرٰيهُۜ قُلْ فَأْتُوا بِعَشْرِ سُوَرٍ مِثْلِهٖ مُفْتَرَيَاتٍ
وَادْعُوا مَنِ اسْتَطَعْتُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿١٣﴾
فَاِلَّمْ يَسْتَجِيبُوا لَكُمْ فَاعْلَمُوٓا اَنَّمَٓا اُنْزِلَ بِعِلْمِ اللّٰهِ وَاَنْ
لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۚ فَهَلْ اَنْتُمْ مُسْلِمُونَ ﴿١٤﴾ مَنْ كَانَ يُرِيدُ
الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا وَزِينَتَهَا نُوَفِّ اِلَيْهِمْ اَعْمَالَهُمْ فِيهَا وَهُمْ فِيهَا
لَا يُبْخَسُونَ ﴿١٥﴾ اُولٰٓئِكَ الَّذِينَ لَيْسَ لَهُمْ فِي الْاٰخِرَةِ اِلَّا النَّارُۘ
وَحَبِطَ مَا صَنَعُوا فِيهَا وَبَاطِلٌ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١٦﴾
اَفَمَنْ كَانَ عَلٰى بَيِّنَةٍ مِنْ رَبِّهٖ وَيَتْلُوهُ شَاهِدٌ مِنْهُ
وَمِنْ قَبْلِهٖ كِتَابُ مُوسٰٓى اِمَامًا وَرَحْمَةًۜ اُولٰٓئِكَ يُؤْمِنُونَ بِهٖۜ
وَمَنْ يَكْفُرْ بِهٖ مِنَ الْاَحْزَابِ فَالنَّارُ مَوْعِدُهُۚ فَلَا تَكُ فِي مِرْيَةٍ
مِنْهُ اِنَّهُ الْحَقُّ مِنْ رَبِّكَ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿١٧﴾
وَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنِ افْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًاۜ اُولٰٓئِكَ يُعْرَضُونَ
عَلٰى رَبِّهِمْ وَيَقُولُ الْاَشْهَادُ هٰٓؤُلَٓاءِ الَّذِينَ كَذَبُوا عَلٰى رَبِّهِمْۚ
اَلَا لَعْنَةُ اللّٰهِ عَلَى الظَّالِمِينَۙ ﴿١٨﴾ اَلَّذِينَ يَصُدُّونَ عَنْ سَبِيلِ
اللّٰهِ وَيَبْغُونَهَا عِوَجًاۜ وَهُمْ بِالْاٰخِرَةِ هُمْ كَافِرُونَ ﴿١٩﴾

**13.** Qey ew dibêjin: “Wî, ew ji ber xwe ve lihev anîye?” Bibêje: “Nexwe hûn jî deh sûreyên weke wê ji ber xwe lihevhatî bînin (em binêrin). Eger hûn ji rastan bin, ji xeynî Allah hûn karibin gazî kî dikin bikin.”

**14.** Eger dîsa bersiv nedin (daweta) we, bizanibin ku ev (Qur'an) bi ilmê Allah nazil bûye. Û ji wî (ji Allah) pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh tune. Êdî hûn bûne ji muslîman (ji wan evdên ku terka şirkê kirine û li ser tewhîdê berê xwe dane Allah)?

**15.** Her kî jiyana dinyayê û zîneta wê bixwaze, em ê keda wan li wê derê bê kêmasî bidin wan. Di wê xisûsê de li wir qet kêmasîyê jî nabînin.

**16.** Ji bo vana li axîretê ji agir pê ve nesîbek/tiştek tune. Kar û kirinên wan berhewa bûye. Jixwe tiştê ku kirine jî batil in.

(Allah (ac) diyar kiriye ku, ew qas nîmetên dinyayê ji bo însan xuliqandîye (7/A’raf, 32) û însan jî ji ber fitreta xwe mubtelayê/dildayîyê van nîmetane (3/Âl-î Îmran, 14). Li ser vêya, mirov bizanibe ku hezkirina dinyayê û nîmetên hene tevde ji Allah in, daxwaza wan nabe pirsgirêkeke îtîqadî an jî exlaqî. Lê belê bi qasî perestîyê hezkirina dinyayê û xebata bi tenê ji bo wê (weke di ayetê de hatîye diyarkirin) hezkirina dinyayê ji bo kesekî bibe fitne û evdîtîya wî yê ji Allah re bide ji bîr kirin (9/Tewbe, 23-24) û bi tenê ji bo dinyayê kêfxweş an jî hêrs bibe (9/Tewbe, 58-59), ha ev nexweşîneke îtîqadî û merezeke exlaqî ye.

**17.** Kesê ku ji cem Rabbê xwe li ser delîlek vikîvekirî be û (ji bo rastîya wî) ji Allah şahidek jî hatibe û ji berê de jî bi rehberî û bi rahmet Kitêba Mûsa li balê be ma qet dibe weke wan (ew ên îmân anîne û ên îmân neanîne qet dibin weke hev)? Evana bi wê (Qur'anê) îmân tînin. Ji koman/ji hizban her kî wê înkar bike, cihê ku jê re hatîye weadkirin, agir e. Bila der heqê wê de qet tu gumana te tune be. Bêguman ew (Qur'an) heqîyeke ku ji Rabbê te (hatî) ye. Lê pirên însanan îmân naynin.

**18.** Ji wî kesê ku li ser Allah derewan lihev tîne û bêbextîya dike zalimtir kî heye? Evana wê ji Rabbê xwe re bên rapêşkirin. Wê şahid jî bibêjin: “Ew ên ku li hemberî Rabbê xwe derew lihev dianîn ha ev in.” (Û dibêjin:) “Baldar bin/Dîqat bikin! Laneta Allah li ser zaliman e.”

**19.** Ew in ku; ji rêya Allah men dikin û di wê de daxwaza çewtîyê dikin. Ew ên ku axîretê înkar dikin ew bixwe ne.

اُو۬لٰٓئِكَ لَمْ يَكُونُوا مُعْجِزٖينَ فِي الْاَرْضِ وَمَا كَانَ لَهُمْ
مِنْ دُونِ اللّٰهِ مِنْ اَوْلِيَٓاءَۢ يُضَاعَفُ لَهُمُ الْعَذَابُۜ مَا كَانُوا
يَسْتَطٖيعُونَ السَّمْعَ وَمَا كَانُوا يُبْصِرُونَ ﴿٢٠﴾ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذٖينَ
خَسِرُٓوا اَنْفُسَهُمْ وَضَلَّ عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ﴿٢١﴾ لَا جَرَمَ
اَنَّهُمْ فِي الْاٰخِرَةِ هُمُ الْاَخْسَرُونَ ﴿٢٢﴾ اِنَّ الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ وَاَخْبَتُٓوا اِلٰى رَبِّهِمْۙ اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ الْجَنَّةِۚ
هُمْ فٖيهَا خَالِدُونَ ﴿٢٣﴾ مَثَلُ الْفَرٖيقَيْنِ كَالْاَعْمٰى وَالْاَصَمِّ
وَالْبَصٖيرِ وَالسَّمٖيعِۜ هَلْ يَسْتَوِيَانِ مَثَلًاۜ اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ﴿٢٤﴾
وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا نُوحًا اِلٰى قَوْمِهٖٓۘ اِنّٖي لَكُمْ نَذٖيرٌ مُبٖينٌۙ ﴿٢٥﴾
اَنْ لَا تَعْبُدُٓوا اِلَّا اللّٰهَۜ اِنّٖٓي اَخَافُ عَلَيْكُمْ عَذَابَ يَوْمٍ اَلٖيمٍ ﴿٢٦﴾
فَقَالَ الْمَلَاُ الَّذٖينَ كَفَرُوا مِنْ قَوْمِهٖ مَا نَرٰيكَ اِلَّا بَشَرًا مِثْلَنَا
وَمَا نَرٰيكَ اتَّبَعَكَ اِلَّا الَّذٖينَ هُمْ اَرَاذِلُنَا بَادِيَ الرَّاْيِۚ وَمَا نَرٰى
لَكُمْ عَلَيْنَا مِنْ فَضْلٍ بَلْ نَظُنُّكُمْ كَاذِبٖينَ ﴿٢٧﴾ قَالَ يَا قَوْمِ
اَرَاَيْتُمْ اِنْ كُنْتُ عَلٰى بَيِّنَةٍ مِنْ رَبّٖي وَاٰتٰينٖي رَحْمَةً مِنْ عِنْدِهٖ
فَعُمِّيَتْ عَلَيْكُمْۜ اَنُلْزِمُكُمُوهَا وَاَنْتُمْ لَهَا كَارِهُونَ ﴿٢٨﴾

**20.** Ew nikarin li ser rûyê erdê (Allah) aciz bihêlin. Ji xeynî Allah dostê wan jî tune (ku ji wan re alîkarî bike). Ezabê wan qat bi qat tê zêdekirin. (Lewre) ewana (li dinyayê) ji bihîstina (heqîyê) re bêsemax bûn û (heqîyê) nedidîtin.

**21.** Ewana, xwe bixwe xisirandine. Ew tiştê (bi navê dîn) lihev anîne jî li ber wan winda bûn, çûn.

**22.** Bêşik, ew ên li axîretê herî zêde dixisirin ha ev bixwe ne.

**23.** Bêguman ew ên îmân anîne û amelên salih kirine û bi axbet (bi sitûxwarî û bi dilhedanî) girêdayîyê Rabbê xwe ne, ehlê cennetê ne û wê di wir de ebedî bimînin.

**24.** Mîsala wan her du firqeyan (ku qismek cennetî ne û qismek jî cehennemî ne) weke mîsala (ew koma) kor û ker û (ew koma) dibînin û dibihîzin e. (Ev her du kom) wek mîsal qet dibin weke hev? Hûn qet şîret nagirin?

**25.** Sond be, me ji qewmê wî re Nûh şand. (Gotibû:) “Bêguman ez ji bo we hişyarkerekî eşkere me.”

**26.** “Ji Allah pê ve ji tu kesî re îbadet nekin. Bêguman ez ji bo we, ji ezabê rojeke biêş û jan ditirsim.”

**27.** Giregirên kafir ên ji qewmê wî gotibûn: “Em te jî bes mirovekî wekî xwe (ji rêzê) dibînin. Em bi vê bawer in ku ji kesên kêmaqil û pêxwas pê ve ji me kesî nedaye pey te. (Her wiha) em ne bawer in ku (hûn ehlê heq in û) li hemberî me tu serdestîya we hebe. Berevajî/bilekîs, em zen dikin ku hûn ji derewkaran in.”

**28.** Gotibû: “Gelî qewmê min! Hûn çi difikirin? (Ka bibêjin!) Eger ez ji cem Rabbê xwe li ser delîlekî bim û wî jî ji bal xwe ve rahmetek (wehîy) dabe min û ew ji we re veşartî mabe (çavên ku hûn vê heqîyê bibînin nedabe we) digel ku hûn naxwazin jî em ê wê bi zorê bi we bidin pejirandin?

وَيَا قَوْمِ لَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ مَالًاۜ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلَى اللّٰهِ
وَمَٓا اَنَا بِطَارِدِ الَّذ۪ينَ اٰمَنُواۜ اِنَّهُمْ مُلَاقُوا رَبِّهِمْ وَلٰكِنّ۪ٓي اَرٰيكُمْ
قَوْمًا تَجْهَلُونَ ﴿٢٩﴾ وَيَا قَوْمِ مَنْ يَنْصُرُن۪ي مِنَ اللّٰهِ اِنْ طَرَدْتُهُمْۜ
اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ﴿٣٠﴾ وَلَٓا اَقُولُ لَكُمْ عِنْد۪ي خَزَٓائِنُ اللّٰهِ
وَلَٓا اَعْلَمُ الْغَيْبَ وَلَٓا اَقُولُ اِنّ۪ي مَلَكٌ وَلَٓا اَقُولُ لِلَّذ۪ينَ تَزْدَر۪ٓي
اَعْيُنُكُمْ لَنْ يُؤْتِيَهُمُ اللّٰهُ خَيْرًاۜ اَللّٰهُ اَعْلَمُ بِمَا ف۪ٓي اَنْفُسِهِمْۚ اِنّ۪ٓي
اِذًا لَمِنَ الظَّالِم۪ينَ ﴿٣١﴾ قَالُوا يَا نُوحُ قَدْ جَادَلْتَنَا فَاَكْثَرْتَ
جِدَالَنَا فَأْتِنَا بِمَا تَعِدُنَٓا اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِق۪ينَ ﴿٣٢﴾
قَالَ اِنَّمَا يَأْت۪يكُمْ بِهِ اللّٰهُ اِنْ شَٓاءَ وَمَٓا اَنْتُمْ بِمُعْجِز۪ينَ ﴿٣٣﴾
وَلَا يَنْفَعُكُمْ نُصْح۪ٓي اِنْ اَرَدْتُ اَنْ اَنْصَحَ لَكُمْ اِنْ كَانَ اللّٰهُ
يُر۪يدُ اَنْ يُغْوِيَكُمْۜ هُوَ رَبُّكُمْ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَۜ ﴿٣٤﴾
اَمْ يَقُولُونَ افْتَرٰيهُۜ قُلْ اِنِ افْتَرَيْتُهُ فَعَلَيَّ اِجْرَام۪ي وَاَنَا۬ بَر۪ٓيءٌ مِمَّا
تُجْرِمُونَ ﴿٣٥﴾ وَاُو۫حِيَ اِلٰى نُوحٍ اَنَّهُ لَنْ يُؤْمِنَ مِنْ قَوْمِكَ اِلَّا مَنْ
قَدْ اٰمَنَ فَلَا تَبْتَئِسْ بِمَا كَانُوا يَفْعَلُونَۚ ﴿٣٦﴾ وَاصْنَعِ الْفُلْكَ
بِاَعْيُنِنَا وَوَحْيِنَا وَلَا تُخَاطِبْن۪ي فِي الَّذ۪ينَ ظَلَمُواۚ اِنَّهُمْ مُغْرَقُونَ ﴿٣٧﴾

**29.** "Gelî qewmê min! (Di muqabilê vê dawet û teblîxa xwe de) ez ji we qet malekî naxwazim. Heqê min aîdê Allah e. Ez mumînan ji cem xwe naqewirînim. Bêguman ew ê derkevin hizûra Rabbê xwe. Lê ez dibînim/bawerim ku hûn qewmekî cahiltî dikin in."

**30.** Gelî qewmê min! (Hesêbankî/feraza ez bi ya we bikim û) wan ji cem xwe biqewirînim (û Allah ezab li min bike), kî heye ku min ji (ezabê) Allah biparêze? Hûn şîret nagirin?

**31.** Ez ji we re nabêjim xezîneyên Allah li cem min in. Ez bi xeybê jî nizanim. Ez nabêjim 'ez melâîket im' jî. Wekî din (ji bo ku hûn ji min qayîl bibin) ez ji bo wan ên ku hûn di çavên xwe de bênirx/kêm dibinin jî nabêjim Allah qet xêrekî li wan nake. Allah çêtir bi tiştê di nefsan de dizane. (Eger ez van tiştan bibêjim) bêguman ez ê bibim ji zaliman.

**32.** Gotibûn: "Ya Nûh! Te bi me re pir nîqaş kir û tu di vê nîqaşê de pêş de jî çûyî. Eger tu rast dibêjî, ka ew (ezab) a ku te li me wead kiriye ji me re bîne (de em bibînin)."

**33.** Gotibû: "Eger Allah bixwaze dê wî (ezabê) di ser we de bîne û hûn qet nikarin wî aciz bihêlin!"

**34.** "Eger Allah daxwaz kiribe ku we bixerifîne, ez bixwazim şîretan li we bikim jî şîretên min bi kêrî we nayên. Ew Rabbê we ye û hûn ê li wî bêne vegerandin."

**35.** Qey ew dibêjin: "Wî, ew ji ber xwe ve lihev anîye?" Bibêje: "Eger min ew ji ber xwe li hev anîbe, gunehê wê ji min re ye. Û ez ji wan sucên ku hûn dikin dûr im/berî me."

**36.** Ji Nûh re wiha hate wehîykirin: "Ji qewmê we, ji ew ên îmân anîne pê ve wê tu kes bawer neke. (Her wiha) ji ber kar û kirinên wan ve xemgîn nebe."

**37.** "Li ber çavê me û (di rehberîya) wehîya me de keştîyê çêke. Di heqê zilimkaran de ji min re tiştekî nebêje. Lewre (hukmê der heqê wan de vebirî ye) wê ew bixeniqin."

**38.** (Li ser emrê Allah) keştîyê çêdikir. Her cara ku giregirên qewmê wî serî lê didan tinazên xwe pê dikirin. Got: “Eger hûn tinazên xwe bi me bikin çawa ku hûn tinazên xwe bi me dikin em ê jî tinazên xwe bi we bikin.”

**39.** Di nêzîk de hûn ê bizanibin/fêm bikin ku ew ezabê nizmker û riswaker wê bi ser kî ve bê û ezabê ebedî wê di ser kî bigire.”



**40.** Axir, dema emrê me hat û tenûr kelîya (dema kanî fûrîyan û av ji erdê bilind bû) me got: “Ji her çeşîdî (heywanan) cotecot li keştîyê bar bike. Ew ên di aleyha wan de (der heqê helakbûna wan de) hukim hatîye vebirîn ne tê de, malbata xwe û mumînan jî li keştîyê siwar bike.” Jixwe ew ên ku pê îmân anîbûn, pir hindik bûn.

(Di encama dawet û teblîxa 950 sal de (29/Ankebût, 14) pir kêm însan îcabetî bang û daweta wî kirine herwiha Nûh (as) ji pêxemberên Ulu’l Azm hatîye pejirandin (42/Şûra, 13) û bûye Nebîyekî wisan ku ji bo dawetvanên îslâmê re bûye mîsalekî bijare. Ligel vê sûreyek bi navê wî hatîye daxistin ku bi tevahî behsa qiseya wî dike. Lewre ji bo daweta îslâmê û ji bo dawetvanên tewhîdê ‘pirjimarî’ qet tu cara nebûye hedef û meqset. Meqseda kesên dawetvan; li ser rastîyê û bi zelalî fêmkirina dîn û bitenê dawet û teblîxeke li ser îstîqametê ji Allah re û jiyaneke bê muxalefeta esasên ku însanan gazî wan dikin derbas kirin e. Serkeftin û muweffeqîyet ne di hejmara piranî de ye, bes di bihevrebûna mumînên dilsoz ên fedakâr û sebatkar û xwedî îmana qawî û amelen salih de ye. Rabbê me di gelek ayetên Qur'anê de piranî/zêdeyî rexne kiriye û diyar kiriye ku piranîya mirovan muşrîk in (30/Rûm, 42) û xerifî ne (37/Saffât, 71) û ew ên bidin pey wan jî rêşaş in (6/En’am, 116) û aqil nagirin (5/Maîde, 103) û cahil in (6/En’am, 111) û şikur nakin (2/Baqara, 243) û nêzî îmanê nabin (13/Re’d, 1) û fasiqîyê hildibjêrin (3/Âl-î Îmran, 110) û ji heqîyê hez nakin (23/Mû’mînûn, 70). Di muqabilê vê de carbecar bal kişandîye/dêhn kişandîye ku; kesên îcabetî bang û daweta pêxemberan kirine di kêmanî de mane (2/Baqara, 249; 10/Yûnus, 83; 11/Hûd, 40; 38/Sâd, 24))

وَيَصْنَعُ الْفُلْكَ وَكُلَّمَا مَرَّ عَلَيْهِ مَلَأٌ مِنْ قَوْمِهِ سَخِرُوا مِنْهُ
قَالَ اِنْ تَسْخَرُوا مِنَّا فَاِنَّا نَسْخَرُ مِنْكُمْ كَمَا تَسْخَرُونَ ﴿٣٨﴾
فَسَوْفَ تَعْلَمُونَ مَنْ يَأْتِيهِ عَذَابٌ يُخْزِيهِ وَيَحِلُّ عَلَيْهِ
عَذَابٌ مُقِيمٌ ﴿٣٩﴾ حَتّٰى اِذَا جَٓاءَ اَمْرُنَا وَفَارَ التَّنُّورُ قُلْنَا احْمِلْ
فِيهَا مِنْ كُلٍّ زَوْجَيْنِ اثْنَيْنِ وَاَهْلَكَ اِلَّا مَنْ سَبَقَ عَلَيْهِ الْقَوْلُ
وَمَنْ اٰمَنَ وَمَٓا اٰمَنَ مَعَهُٓ اِلَّا قَلِيلٌ ﴿٤٠﴾ وَقَالَ ارْكَبُوا فِيهَا بِسْمِ
اللّٰهِ مَجْرٰيهَا وَمُرْسٰيهَا اِنَّ رَبّي لَغَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿٤١﴾ وَهِيَ تَجْرِي
بِهِمْ فِي مَوْجٍ كَالْجِبَالِ وَنَادٰى نُوحٌ ابْنَهُ وَكَانَ فِي مَعْزِلٍ
يَا بُنَيَّ ارْكَبْ مَعَنَا وَلَا تَكُنْ مَعَ الْكَافِرِينَ ﴿٤٢﴾
قَالَ سَاٰوِٓي اِلٰى جَبَلٍ يَعْصِمُنِي مِنَ الْمَٓاءِ قَالَ لَا عَاصِمَ الْيَوْمَ
مِنْ اَمْرِ اللّٰهِ اِلَّا مَنْ رَحِمَ وَحَالَ بَيْنَهُمَا الْمَوْجُ فَكَانَ
مِنَ الْمُغْرَقِينَ ﴿٤٣﴾ وَقِيلَ يَٓا اَرْضُ ابْلَعِي مَٓاءَكِ وَيَا سَمَٓاءُ اَقْلِعِي
وَغِيضَ الْمَٓاءُ وَقُضِيَ الْاَمْرُ وَاسْتَوَتْ عَلَى الْجُودِيِّ وَقِيلَ
بُعْدًا لِلْقَوْمِ الظَّالِمِينَ ﴿٤٤﴾ وَنَادٰى نُوحٌ رَبَّهُ فَقَالَ رَبِّ اِنَّ ابْنِي
مِنْ اَهْلِي وَاِنَّ وَعْدَكَ الْحَقُّ وَاَنْتَ اَحْكَمُ الْحَاكِمِينَ ﴿٤٥﴾

**41.** Got: “Lê siwar bibin. Çûyîna wê jî sekina wê jî bi navê Allah e. Bêguman Rabbê min (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aquba gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**42.** Ew (keştî), ew di nava pêlên weke çiyan (bilind) de dibir. Nûh, gazî kurê xwe yê ku bi tenê mabû kir û got: “Hê kurê min! Bi me re (li keştîyê) siwar be. Nebe ku tu bibî hevalê kafiran.”

**43.** Got: “Ez ê hilkişim sere çiyayekî ku ew min ji avê (ji tofanê) biparêze.” Got: “Ji xeynî ew ên ku Allah rehma xwe li wan kiriye îro parêzvan tunin.” Pêl kete navbera wan û ew jî bû ji wan ên xeniqandî.

**44.** Hate gotin: “Hê erd! Ava xwe bikişîne. Û hê esman! Tu jî ava xwe bigire.” Av hilkişîya û îş qedîya. (Keştî) li ser (çiyayê) Cûdî danî û ma sekinî. Ji qewmê zalim re jî hate gotin: “Bila (ji rahmeta Allah) dûr bibin.”

**45.** Nûh, gazî Rabbê xwe kir (û got:) “Rabbê min! Muheqeq kurê min jî ji malbata min e. Û bêguman weada te heq e. Û tu (ew ê ku hukmê herî rast û zexm dide) Ahkemu’l Hakimîn î.

قَالَ يَا نُوحُ اِنَّهُ لَيْسَ مِنْ اَهْلِكَ اِنَّهُ عَمَلٌ غَيْرُ صَالِحٍ
فَلَا تَسْـَٔلْنِ مَا لَيْسَ لَكَ بِه۪ عِلْمٌ اِنّ۪ٓي اَعِظُكَ اَنْ تَكُونَ
مِنَ الْجَاهِل۪ينَ ﴿٤٦﴾ قَالَ رَبِّ اِنّ۪ٓي اَعُوذُ بِكَ اَنْ اَسْـَٔلَكَ
مَا لَيْسَ ل۪ي بِه۪ عِلْمٌ وَاِلَّا تَغْفِرْ ل۪ي وَتَرْحَمْن۪ٓي اَكُنْ
مِنَ الْخَاسِر۪ينَ ﴿٤٧﴾ ق۪يلَ يَا نُوحُ اهْبِطْ بِسَلَامٍ مِنَّا وَبَرَكَاتٍ
عَلَيْكَ وَعَلٰٓى اُمَمٍ مِمَّنْ مَعَكَ وَاُمَمٌ سَنُمَتِّعُهُمْ ثُمَّ يَمَسُّهُمْ
مِنَّا عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٤٨﴾ تِلْكَ مِنْ اَنْبَٓاءِ الْغَيْبِ نُوح۪يهَٓا اِلَيْكَ
مَا كُنْتَ تَعْلَمُهَٓا اَنْتَ وَلَا قَوْمُكَ مِنْ قَبْلِ هٰذَا فَاصْبِرْ
اِنَّ الْعَاقِبَةَ لِلْمُتَّق۪ينَ ﴿٤٩﴾ وَاِلٰى عَادٍ اَخَاهُمْ هُودًا قَالَ يَا قَوْمِ
اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ اِنْ اَنْتُمْ اِلَّا مُفْتَرُونَ ﴿٥٠﴾ يَا قَوْمِ
لَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ اَجْرًا اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلَى الَّذ۪ي فَطَرَن۪ي
اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٥١﴾ وَيَا قَوْمِ اسْتَغْفِرُوا رَبَّكُمْ ثُمَّ تُوبُٓوا اِلَيْهِ
يُرْسِلِ السَّمَٓاءَ عَلَيْكُمْ مِدْرَارًا وَيَزِدْكُمْ قُوَّةً اِلٰى قُوَّتِكُمْ
وَلَا تَتَوَلَّوْا مُجْرِم۪ينَ ﴿٥٢﴾ قَالُوا يَا هُودُ مَا جِئْتَنَا بِبَيِّنَةٍ
وَمَا نَحْنُ بِتَارِك۪ٓي اٰلِهَتِنَا عَنْ قَوْلِكَ وَمَا نَحْنُ لَكَ بِمُؤْمِن۪ينَ ﴿٥٣﴾

**46.** Got: "Ya Nûh! Bêguman ew ne ji malbata te ye. Ew, ne amelekî salih e. Tiştê ku tu pê nizanî ji min nexwaze. Ji bo ku tu nebî ji cahilan ez van şîretan li te dikim."

**47.** (Nûh) got: "Rabbê min! Ji ber tiştên ku zanîna min pê tûne, ez xwe bi te diparêzim. Rabbê min! Eger tu mexfîret û rehmê li min nekî ez ê bibim ji zîyandaran."

**48.** Hate gotin: "Ya Nûh! Bi silav û bereketa me ya li ser te û li ser ûmmetên bi te re ne, (Ji keştîyê) dakeve. Em ê hin ûmmetan jî sûdmend/feydedar bikin. Paşê wê ji me ezabekî biêş û jan bigihîje wan."

**49.** Evana ji xeberên xeybê ne ku em ji te re wehîy dikin. Berê ne te û ne jî qewmê te (bi van agahîyan) dizanîbûn. (Nexwe) sebir bike! Bêguman aqûbet bes ji Mutteqîyan re ye.

**50.** Me ji qewmê Ad re jî birayên wan Hûd (wek pêxember şand). (Hûd ji qewmê xwe re) got: "Gelî qewmê min! Ji Allah re îbadetê/evdîtîyê bikin. Ji we re ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu Îlâh tune. Hûn her bêbext/îftiraker in."

**51.** "Gelî qewmê min! (Di muqabilê vê dawet û teblîxa xwe de) ez ji we qet heqekî naxwazim. Heqê min li ser Allah e ku wî ez xuliqandime. Hûn aqil nagirin?

**52.** "Gelî qewmê min! Ji Rabbê xwe mexfîretê bixwazin. Paşê ji wî re tobe bikin ku bila ji asîman di ser we de rahmetê (baranê) bibarîne û hêz li ser hêza we zêde bike. Hûn wek mucrîmên gunehkar rû nevegerînin."

**53.** Gotibûn: "Ya Hûd! Te ji me re delîlek/mûcîzeyek vikîvekirî neanîye. Em bi gotina te jî dev ji îlâhên xwe bernadin û em bi te îmân naynin."

اِنْ نَقُولُ اِلَّا اعْتَرٰيكَ بَعْضُ اٰلِهَتِنَا بِسُوٓءٍۜ قَالَ اِنّ۪ٓي اُشْهِدُ اللّٰهَ
وَاشْهَدُٓوا اَنّ۪ي بَر۪ٓيءٌ مِمَّا تُشْرِكُونَۙ ﴿٥٤﴾ مِنْ دُونِه۪ فَك۪يدُون۪ي جَم۪يعًا
ثُمَّ لَا تُنْظِرُونِ ﴿٥٥﴾ اِنّ۪ي تَوَكَّلْتُ عَلَى اللّٰهِ رَبّ۪ي وَرَبِّكُمْۜ مَا مِنْ دَٓابَّةٍ
اِلَّا هُوَ اٰخِذٌ بِنَاصِيَتِهَاۜ اِنَّ رَبّ۪ي عَلٰى صِرَاطٍ مُسْتَق۪يمٍ ﴿٥٦﴾ فَاِنْ
تَوَلَّوْا فَقَدْ اَبْلَغْتُكُمْ مَٓا اُرْسِلْتُ بِه۪ٓ اِلَيْكُمْۜ وَيَسْتَخْلِفُ رَبّ۪ي قَوْمًا
غَيْرَكُمْۚ وَلَا تَضُرُّونَهُ شَيْـًٔاۜ اِنَّ رَبّ۪ي عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ حَف۪يظٌ ﴿٥٧﴾
وَلَمَّا جَٓاءَ اَمْرُنَا نَجَّيْنَا هُودًا وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا مَعَهُ بِرَحْمَةٍ مِنَّاۚ
وَنَجَّيْنَاهُمْ مِنْ عَذَابٍ غَل۪يظٍ ﴿٥٨﴾ وَتِلْكَ عَادٌ جَحَدُوا بِاٰيَاتِ رَبِّهِمْ
وَعَصَوْا رُسُلَهُ وَاتَّبَعُٓوا اَمْرَ كُلِّ جَبَّارٍ عَن۪يدٍ ﴿٥٩﴾ وَاُتْبِعُوا ف۪ي هٰذِهِ
الدُّنْيَا لَعْنَةً وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ اَلَٓا اِنَّ عَادًا كَفَرُوا رَبَّهُمْۜ اَلَا بُعْدًا
لِعَادٍ قَوْمِ هُودٍ ﴿٦٠﴾ وَاِلٰى ثَمُودَ اَخَاهُمْ صَالِحًاۢ قَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا
اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُۜ هُوَ اَنْشَاَكُمْ مِنَ الْاَرْضِ وَاسْتَعْمَرَكُمْ
ف۪يهَا فَاسْتَغْفِرُوهُ ثُمَّ تُوبُٓوا اِلَيْهِۜ اِنَّ رَبّ۪ي قَر۪يبٌ مُج۪يبٌ ﴿٦١﴾ قَالُوا
يَا صَالِحُ قَدْ كُنْتَ ف۪ينَا مَرْجُوًّا قَبْلَ هٰذَٓا اَتَنْهٰينَٓا اَنْ نَعْبُدَ
مَا يَعْبُدُ اٰبَٓاؤُ۬نَا وَاِنَّنَا لَف۪ي شَكٍّ مِمَّا تَدْعُونَٓا اِلَيْهِ مُر۪يبٍ ﴿٦٢﴾

**54.** Em ê ji te re enceq vêya bibêjin: “Hinek îlâhên me xenîmî te bûne.” Got: “Allah şahidê min e û hûn jî şahidê min bin ku ez ji wan tiştên hûn pê şirîkatîyê dikin, dûr im.”

**55.** (Hûn îdîa dikin ku hûn ji Allah re îbadetê dikin ya!) Ji xeynî wî (ez ji hemû tiştên ku hûn îbadetê li wan dikin dûr im). Hûn tevde li hemberî min kemîn deynîn (û pêwistîya kemîna xwe jî) paşve nehêlin/nehêlin ku ez çavê xwe jî vekim.”

**56.** “Bêguman min tewekkulê wî Allahê kir ku ew Rabbê min û (Rabb) ê we ye jî. Perçema hemû zindîyan/candaran (ew ê wan kontrol û beralî dike) ew (Allah) e. Beşik Allah li ser rêya rast e.”

(Ji bo helwesta îmanî ya li hemberî tehdîdên ehlê şirkê bnr. 6/En’am, 82.)

**57.** “Eger hûn rû vegerînin, ew hinarîya ku ez pê hatime şandin min ew ji we re teblîx kiriye. Rabbê min di şûna we de qewmekî din tîne û hûn qet nikarin bi tiştekî zîyanê bidin wî. Bi rastî Rabbê min li ser her tiştî Hafîz (parêzvan) e.”

**58.** Çi dema fermana me hat me bi rahmetekî ji cem xwe Hûd û ew ên bi wî re îmân anîne xelas kirin. (Bi rastî) me ew ji ezabekî pir giran xelas kirin.

**59.** Ha, vaye qewmê Âd! Ayetên Rabbê xwe înkar kirin û îsyanê ji Rasûlê wî re kirin. (Dev ji Allah û Rasûlê wî berdan û) dane pey her zordarekî rikdar.

**60.** Hem li vê dinyayê û hem jî li axîretê ber bi lanete ketin. Baldar bin/Dîqat bikin! Bêguman qewmê Âdem Rabbê xwe înkar kirin. Baldar bin/Dîqat bikin! (Qewmê) Ad ku qewmê Hûd e, (ji rahmeta Allah) hate dûrxistin.

**61.** Me ji qewmê Semûd re jî birayên wan Salih (wek pêxember şand). (Salih ji qewmê xwe re) gotibû: “Gelî qewmê min! Ji Allah re îbadetê/evdîtîyê bikin. Ji we re ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu Îlâh tune. Wî hûn ji erdê (ji axê) xuliqandin û ji ber ku hûn wê derê îmar bikin û heyata xwe bidomînin hûn li wir daye jiyandin. Ji wî mexfîretê bixwazin, paşê jê re tobe bikin. Lewre Rabbê min (ew ê nêzîkî evdên xwe) Qarîb û (îcabetî dûayan û daxwazan dike) Mucîb e.

**62.** Gotibûn: “Ya Salih! Berî niha (berî vê dawetê) tu di nava me de mirovekî ku me hêvîyan jê dikir/qenc bûyî. (Çi yanî) niha tu me ji îbadeta wan tiştên ku bavûkalên me îbadetê wan dikirin men dikî? Bi rastî, ji wê tiştê (ji tewhîdê) ku tu me gazî wê dikî em tê de bêaram û gumanbar in.”

تُؤْت۪ٓي اُكُلَهَا كُلَّ ح۪ينٍ بِاِذْنِ رَبِّهَاۜ وَيَضْرِبُ اللّٰهُ الْاَمْثَالَ
لِلنَّاسِ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ ﴿٢٥﴾ وَمَثَلُ كَلِمَةٍ خَب۪يثَةٍ
كَشَجَرَةٍ خَب۪يثَةٍۨ اجْتُثَّتْ مِنْ فَوْقِ الْاَرْضِ مَا لَهَا مِنْ قَرَارٍ ﴿٢٦﴾
يُثَبِّتُ اللّٰهُ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا بِالْقَوْلِ الثَّابِتِ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا
وَفِي الْاٰخِرَةِۚ وَيُضِلُّ اللّٰهُ الظَّالِم۪ينَ وَيَفْعَلُ اللّٰهُ مَا يَشَٓاءُ ﴿٢٧﴾
اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذ۪ينَ بَدَّلُوا نِعْمَتَ اللّٰهِ كُفْرًا وَاَحَلُّوا
قَوْمَهُمْ دَارَ الْبَوَارِۙ ﴿٢٨﴾ جَهَنَّمَۚ يَصْلَوْنَهَاۜ وَبِئْسَ الْقَرَارُ ﴿٢٩﴾
وَجَعَلُوا لِلّٰهِ اَنْدَادًا لِيُضِلُّوا عَنْ سَب۪يلِه۪ۜ قُلْ تَمَتَّعُوا فَاِنَّ
مَص۪يرَكُمْ اِلَى النَّارِ ﴿٣٠﴾ قُلْ لِعِبَادِيَ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا يُق۪يمُوا
الصَّلٰوةَ وَيُنْفِقُوا مِمَّا رَزَقْنَاهُمْ سِرًّا وَعَلَانِيَةً مِنْ قَبْلِ
اَنْ يَأْتِيَ يَوْمٌ لَا بَيْعٌ ف۪يهِ وَلَا خِلَالٌ ﴿٣١﴾ اَللّٰهُ الَّذ۪ي خَلَقَ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ وَاَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَاَخْرَجَ بِه۪ مِنَ الثَّمَرَاتِ
رِزْقًا لَكُمْۚ وَسَخَّرَ لَكُمُ الْفُلْكَ لِتَجْرِيَ فِي الْبَحْرِ
بِاَمْرِه۪ۚ وَسَخَّرَ لَكُمُ الْاَنْهَارَۚ ﴿٣٢﴾ وَسَخَّرَ لَكُمُ الشَّمْسَ
وَالْقَمَرَ دَٓائِبَيْنِۚ وَسَخَّرَ لَكُمُ الَّيْلَ وَالنَّهَارَۚ ﴿٣٣﴾

**25.** (Ew dar) bi destûra Rabbê xwe her gav fêkîyên xwe dide. Allah mîsalan ji însanan re tîne da ku şîret bigirin.

**26.** Peyva xerab (şirk) jî weke dara xerab e ku koka wê ji erdê hatîye birîn û ne payidar e.

**27.** Allah, mumînan di jiyana dinyayê de jî û di axîretê de jî bi gotineke zexm (Lâilâheillallah) payidar dike. Allah zaliman dixerifîne û Allah çi daxwaz bike wê dike.

(Der heqê ayetên 24. û 25. de:

a. Kelîmeya Lâilâheillallah (Yanê ji Allah pê ve qet tu îlâh tune ku layiqê îbadetê ye.), weke wê dara xweşik e ku qurmên wê di qelban de cih girtîye û şaxên wê jî bi bal Allah ve bilindbûyî ye. Di qelbê mumînan de bandora wê wisan bi hêz e ku her daîm şîreta amelên qenc pê dike. Wekî mamosteyekî berhêldarî û rênasîya kesê mumîn dike. Madem Allah (ac) yek îlâh e, madem ew ê ku razîbûna wî tê daxwazkirin Allah e (ac), herwiha berê xwe bide wî û tobe bike û hez jê bike û jê bitirse û nimêj bike û xizmetê ji îslamê re bike…

b. Kelîmeya Lâilâheillallah (Ji Allah pê ve qet tu îlâh tune ku layiqê îbadetê ye), di jiyana dinyayê de mirovan payîdar dike û îstîqrar dide însan. Mumîn dizane ka îmân bi çi anîye û çima îmân pê anîye. Ba û bahozên guman û fitneyan nikarin zerar bidin îmana wî. Li gorî dewr û dewranên guharte dînê xwe naguherîne û li gorî şert û mercan aqîda xwe diyar nake. Lewre aqîdeya Lâilâheillallah sebatê dide qelbê wî.

Kesên munafiq di qebrê de ji van sualên ku jê têne pirsîn "Rabbê te kî ye? Pêxemberê te kî ye? Dînê te çi ye?" re wiha bersivê dide: "Hı… Hı.. Ez nizanim. Însanan tiştekî digotin, min jî wê tiştê digot." Lê ehlê Lâilâheillallahê (ew ên şadehîyê dabûn ku ji Allah pê ve qet tu îlâhê ku layiqê îbadetê ye tune) jî wiha bersiva xwe didin: "Rabbê min Allah e (ac) û pêxemberê min Muhammed e (ass) û dînê min jî îslam e" û li ser vê gotinê payidar dimînin. (Ebu Dawud, 4753; Îmam Ahmed, 18534, ji Bera bin Azib (re) neqil kirine.) Şirk di eslê xwe de bêkok e. Birastî kesê muşrîk nizane bawerî bi çi anîye. Dînê wî ji zenê pêkhatî ye. Li ser esasekî ne payidar e. Di aqîdê û amelên wî de herûdaîm nedîyarîtî heye. Ji bo ku aqîda wî serûbin bibe gumaneke herî biçûk jî bes e.)

**28.** Ma te ew ên ku nîmetên Allah bi kufrê/bi nankorîyê guherandin û qewmê xwe di warê helakê bi cih kirine nedîtin?

**29.** (Ew warê helakê ku qewmê xwe li wê derê bi cih kirine) cehennem e ku wê têkevinê. Ew der çi warekî xerab e.

**30.** Ji bo ku ji rêya Allah vegerînin ji Allah re şirîkan çêkirin. Bibêje: "Xweş şahîyê bikin! Bêguman cihê ku hunê herinê agir e."

**31.** Ji evdên min ên îmân anîne re bibêje: "Bila nimêja xwe rasterast bikin. Hêj ew roja ku tê de ne bazirganî/tîcaret û ne jî dostanî heye nehatîye, bila ji wê rizqê ku me daye wan bi dizî û bi eşkerehî înfaq bikin."

**32.** Ew ê erd û esmanan xuliqandîye Allah e. (Wî) ji asîman av daxist û bi wê avê ji bo rizqê we fêkîyên cur bi cur derxistin. Bi emrê wî ji bo ku di behrê de here keştîyan xist ber xizmeta we û çeman jî ji xizmeta we re amade kirin.

**33.** Ew ê Roj û Heyv bi rewşên xwe yên wek adetî/bi berdewamî ji bo we musexer/ji emrê we re amade kiriye û şev û roj xistîye bin xizmeta we jî (Allah e).

وَاٰتٰيكُمْ مِنْ كُلِّ مَا سَاَلْتُمُوهُ وَاِنْ تَعُدُّوا نِعْمَتَ
اللّٰهِ لَا تُحْصُوهَا اِنَّ الْاِنْسَانَ لَظَلُومٌ كَفَّارٌ ﴿٣٤﴾ وَاِذْ
قَالَ اِبْرٰهٖيمُ رَبِّ اجْعَلْ هٰذَا الْبَلَدَ اٰمِنًا وَاجْنُبْنٖي وَبَنِيَّ
اَنْ نَعْبُدَ الْاَصْنَامَ ﴿٣٥﴾ رَبِّ اِنَّهُنَّ اَضْلَلْنَ كَثٖيرًا
مِنَ النَّاسِ فَمَنْ تَبِعَنٖي فَاِنَّهُ مِنّٖي وَمَنْ عَصَانٖي فَاِنَّكَ غَفُورٌ
رَحٖيمٌ ﴿٣٦﴾ رَبَّنَا اِنّٖي اَسْكَنْتُ مِنْ ذُرِّيَّتٖي بِوَادٍ غَيْرِ ذٖي
زَرْعٍ عِنْدَ بَيْتِكَ الْمُحَرَّمِ رَبَّنَا لِيُقٖيمُوا الصَّلٰوةَ فَاجْعَلْ
اَفْـِٔدَةً مِنَ النَّاسِ تَهْوٖي اِلَيْهِمْ وَارْزُقْهُمْ مِنَ الثَّمَرَاتِ لَعَلَّهُمْ
يَشْكُرُونَ ﴿٣٧﴾ رَبَّنَا اِنَّكَ تَعْلَمُ مَا نُخْفٖي وَمَا نُعْلِنُ وَمَا يَخْفٰى
عَلَى اللّٰهِ مِنْ شَيْءٍ فِي الْاَرْضِ وَلَا فِي السَّمَاءِ ﴿٣٨﴾ اَلْحَمْدُ
لِلّٰهِ الَّذٖي وَهَبَ لٖي عَلَى الْكِبَرِ اِسْمٰعٖيلَ وَاِسْحٰقَ اِنَّ رَبّٖي
لَسَمٖيعُ الدُّعَاءِ ﴿٣٩﴾ رَبِّ اجْعَلْنٖي مُقٖيمَ الصَّلٰوةِ وَمِنْ ذُرِّيَّتٖي
رَبَّنَا وَتَقَبَّلْ دُعَاءِ ﴿٤٠﴾ رَبَّنَا اغْفِرْ لٖي وَلِوَالِدَيَّ وَلِلْمُؤْمِنٖينَ
يَوْمَ يَقُومُ الْحِسَابُ ﴿٤١﴾ وَلَا تَحْسَبَنَّ اللّٰهَ غَافِلًا عَمَّا يَعْمَلُ
الظَّالِمُونَ اِنَّمَا يُؤَخِّرُهُمْ لِيَوْمٍ تَشْخَصُ فٖيهِ الْاَبْصَارُ ﴿٤٢﴾

**34.** Wî, her tiştên ku we jê xwestîye daye we. Eger hûn bixwazin nîmetên Allah bijmêrin hûn nikarin wan tevan bijmêrin. Bêguman însan heyîneke pirzêde zilimkar û pir nankor e.

**35.** (Bi bîr bînin!) Dema Îbrahîm gotibû: "Rabbê min! Vê bajarê hanê emîn/ewledar bike. Min û zarokên min ji perestîya pûtan biparêze."

**36.** "Rabbê min! Bi rastî wan (pûtan) ji însanan gelek kesan xerifandine. Êdî kî bide pey min ew ji min e. Kî jî ji min re îsyan bike, bêguman tu (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm î."

(Pêxemberekî weke Îbrahîm (as) ku îmamê tewhîdê ye, ew bixwe jî ji Allah (ac) ji bo xwe û zarokên xwe hêvîya parastina ji perestîya pûtan dike. Ev, ji ber vê ye ku wî pir qîmet dida tewhîdê û bawer bû ku eger ne alîkarîya Allah (ac) be sebata li ser hîdayetê qet ne mimkûn e. Ev xewf, ji tirs û xewfan ya herî bi rûmet e. Em dibînin ku di hemû îmamên/pêşengên tewhîdê de ev xewf û tirs hebû. Dûaya ku Rasûlullah (saw.) herî zêde dubare kiriye ev bû: "Allahê min ê ku qelban diqulibîne û digerîne! Qelbê min li ser dînê xwe sabît bigire." (Tirmizî, 2140), (Bnr. 2/Baqara, 132-133; 3/Âl-î Îmran, 102))

**37.** "Rabbê me! Bêguman ji bo ku nimêjê rasterast bikin, min hinek zarokên xwe li cem Beytu'l Herama te (li Kâ'be yê), li newaleke bê çandin bi cih kirin. Rabbê me! Êdî tu dilê hinek însanan meylî wan bike û wan bi hinek fêkîyan birizqîne. Hêvî heye ku şikur bikin."

**38.** "Rabbê me! Bêguman tiştê em veşêrin jî eşkere bikin jî tu pê dizanî. Lewre li erd û esmanan tu tiştî ji Allah re girtî/veşartî namîne."

**39.** "Hemd ji Allah re ku di kalîtîya min de Îsmaîl û Îshaq dane min. Bêguman Rabbê min dûayan dibihîze/îcabetî dûayan dike."

**40.** "Rabbê min! Tu min û zurîyeta min di nimêjê de daîmî bike. Rabbê me! Tu dûayê min qebûl bike."

**41.** "Rabbê me! Di roja hisab dîtinê de min û dê û bavê min û hemû mumînan efû bike."

**42.** Tu zen neke ku Allah ji kar û kirinên zaliman bêhay/bêagah e. Enceq wan, heta wê roja ku çavê wan ji dehşetê difire bi derve ve texîr dike/paşde dihêle.

مُهْطِعِينَ مُقْنِعِي رُؤُسِهِمْ لَا يَرْتَدُّ اِلَيْهِمْ طَرْفُهُمْ وَاَفْـِٔدَتُهُمْ
هَوَٓاءٌ ٤٣ وَاَنْذِرِ النَّاسَ يَوْمَ يَاْتِيهِمُ الْعَذَابُ فَيَقُولُ الَّذِينَ
ظَلَمُوا رَبَّنَٓا اَخِّرْنَٓا اِلٰٓى اَجَلٍ قَرِيبٍ نُجِبْ دَعْوَتَكَ
وَنَتَّبِعِ الرُّسُلَ اَوَلَمْ تَكُونُٓوا اَقْسَمْتُمْ مِنْ قَبْلُ مَا لَكُمْ
مِنْ زَوَالٍ ٤٤ وَسَكَنْتُمْ فِي مَسَاكِنِ الَّذِينَ ظَلَمُٓوا
اَنْفُسَهُمْ وَتَبَيَّنَ لَكُمْ كَيْفَ فَعَلْنَا بِهِمْ وَضَرَبْنَا
لَكُمُ الْاَمْثَالَ ٤٥ وَقَدْ مَكَرُوا مَكْرَهُمْ وَعِنْدَ اللّٰهِ
مَكْرُهُمْ وَاِنْ كَانَ مَكْرُهُمْ لِتَزُولَ مِنْهُ الْجِبَالُ ٤٦
فَلَا تَحْسَبَنَّ اللّٰهَ مُخْلِفَ وَعْدِهِ رُسُلَهُ اِنَّ اللّٰهَ عَزِيزٌ
ذُو انْتِقَامٍ ٤٧ يَوْمَ تُبَدَّلُ الْاَرْضُ غَيْرَ الْاَرْضِ وَالسَّمٰوَاتُ
وَبَرَزُوا لِلّٰهِ الْوَاحِدِ الْقَهَّارِ ٤٨ وَتَرَى الْمُجْرِمِينَ يَوْمَئِذٍ
مُقَرَّنِينَ فِي الْاَصْفَادِ ٤٩ سَرَابِيلُهُمْ مِنْ قَطِرَانٍ وَتَغْشٰى
وُجُوهَهُمُ النَّارُ ٥٠ لِيَجْزِيَ اللّٰهُ كُلَّ نَفْسٍ مَا كَسَبَتْ
اِنَّ اللّٰهَ سَرِيعُ الْحِسَابِ ٥١ هٰذَا بَلَاغٌ لِلنَّاسِ وَلِيُنْذَرُوا
بِهِ وَلِيَعْلَمُٓوا اَنَّمَا هُوَ اِلٰهٌ وَاحِدٌ وَلِيَذَّكَّرَ اُو۬لُوا الْاَلْبَابِ ٥٢

**43.** Serê wan berbijor in û dibezin. Çavên wan (ji ber ku zoq maye) li wan venagerin. Qelbê wan jî vikûvala ye. (Dilê wan ji tirsan hatîye devê wan û aqlê wan ji serê wan çûye.)

**44.** Tu, însanan ji wê roja ku ezab bi ser wan de bê hişyar bike! Wê rojê ew ên zilimkar wiha dibêjin: “Rabbê me! Heta demekê muhletê bide me ku em îcabetî daweta te bikin û bidin pey pêxemberan. (Ji wan re wiha bersiv tê dayîn:) “Ma hûn nebûn ku we berê de sond dixwar û digot qet tu zewal ji me re tune” (Çi bû?).

**45.** Hûn di cihê ew ên ku li xwe zilim kiribûn (û helak bibûn) de bi cih bibûn. Me çi bi wan kiribû ji we re eşkere bû. Me (li ser rewşa wan) mîsalan jî dabû we. (Digel vê, we bi axîretê îmân neanî û roja ji nû ve vejînê jî înkar kiribû.)

**46.** Bêguman wan kemînên xwe danîn. (Berdêla/cezaya kemînên wan) li cem Allah e. Dixwaze kemînên wan (wisan be ku) çiyan ji cihê wan bileqînin.

**47.** Tu zen neke ku Allah ji wê ehda (alîkarîyê ku) daye pêxemberên xwe dê jê vegere! Bêguman Allah (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (yê ku heyf/tol distîne) Zuntîqam e.

**48.** Wê rojê erd bi erdeke din re û esman jî (bi esmaneke din re) tê guherandin, ew hemû derdikevin hizûra wî Allah ê (ku di zat û fiêl û sifetên xwe de yekane) Wahid û (ew ê her tişt jê re sitûxwar û di bin hukmê wî de ne) Qahhar e.

**49.** Wê rojê tu dibînî ku dest û pîyên mucrîman/gunehkaran bi hev girêdayî û di qeydan de şidandî ne.

**50.** Libasên wan ji qetranê ye û rûyên wan jî bi agir tê nuxamtin.

**51.** (Ev,) ji ber vê ye ku Allah berdêla her nefsî li gor keda wî didê. Bêguman Allah serîu’lhîsab e (ew e ku pir zû hisab dibîne).

**52.** Ev (Qur'an) ji bo pê bêne hişyarkirin û bizanibin ku (Allah) yek îlâhek tenê ye û ew ên aqilmend şîretan bigirin ji însanan re hinareyek e/peyamek e.

## 15. SÛREYA HÎCR




*(Sûreya Hîcr, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û not û neh (99) ayet e. )*

*Di Qur'anê de sûreya pazdehem e. Di nava sûreyê de behsa qewmê (Hîcr) ku di nav teht û latên necirandine de rûdiniştin tê/dihê kirin. Ji ber vê yekê bi navê Hîcr hatîye navandin. Di ayeta 9. de li ser parastîbûna Qur'anê hatîye sekinandin. Herwisa behsa sedema xuliqandina çiyan û heşînahîyan û ba û baran tê kirin. Ligel vê xuliqandina însan û cinan û rewşa peyrevên şeytan û mêvanên Îbrahîm (as) û qiseya Lût (as) û qewmê wî jî tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim).*

سُورَةُ الْحِجْرِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ تِسْعٌ وَتِسْعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
الٓرٰ تِلْكَ اٰيَاتُ الْكِتَابِ وَقُرْاٰنٍ مُبِينٍ ﴿١﴾ رُبَمَا يَوَدُّ الَّذِينَ
كَفَرُوا لَوْ كَانُوا مُسْلِمِينَ ﴿٢﴾ ذَرْهُمْ يَاْكُلُوا وَيَتَمَتَّعُوا وَيُلْهِهِمُ
الْاَمَلُ فَسَوْفَ يَعْلَمُونَ ﴿٣﴾ وَمَٓا اَهْلَكْنَا مِنْ قَرْيَةٍ اِلَّا وَلَهَا كِتَابٌ
مَعْلُومٌ ﴿٤﴾ مَا تَسْبِقُ مِنْ اُمَّةٍ اَجَلَهَا وَمَا يَسْتَاْخِرُونَ ﴿٥﴾ وَقَالُوا
يَٓا اَيُّهَا الَّذٖى نُزِّلَ عَلَيْهِ الذِّكْرُ اِنَّكَ لَمَجْنُونٌ ﴿٦﴾ لَوْ مَا تَاْتٖينَا
بِالْمَلٰٓئِكَةِ اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِقٖينَ ﴿٧﴾ مَا نُنَزِّلُ الْمَلٰٓئِكَةَ
اِلَّا بِالْحَقِّ وَمَا كَانُٓوا اِذًا مُنْظَرٖينَ ﴿٨﴾ اِنَّا نَحْنُ نَزَّلْنَا الذِّكْرَ وَاِنَّا
لَهُ لَحَافِظُونَ ﴿٩﴾ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ فٖى شِيَعِ الْاَوَّلٖينَ ﴿١٠﴾
وَمَا يَاْتٖيهِمْ مِنْ رَسُولٍ اِلَّا كَانُوا بِهٖ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿١١﴾ كَذٰلِكَ
نَسْلُكُهُ فٖى قُلُوبِ الْمُجْرِمٖينَ ﴿١٢﴾ لَا يُؤْمِنُونَ بِهٖ وَقَدْ خَلَتْ سُنَّةُ
الْاَوَّلٖينَ ﴿١٣﴾ وَلَوْ فَتَحْنَا عَلَيْهِمْ بَابًا مِنَ السَّمَٓاءِ فَظَلُّوا فٖيهِ يَعْرُجُونَ ﴿١٤﴾
لَقَالُٓوا اِنَّمَا سُكِّرَتْ اَبْصَارُنَا بَلْ نَحْنُ قَوْمٌ مَسْحُورُونَ ﴿١٥﴾

**1.** Elîf, Lâm, Râ. Ev, ayetên vê Kitêbê û Qur'an'a mûbîn/vikîvekirî ye.

**2.** Demeke wisan dibe ku; ew ên kafir wê gelek caran daxwaz bikin ku muslîm (ew evdên ku şirkê terk kirine û bi tewhîdê berê xwe dane Allah) bibûna.

**3.** Wan (di halê xwe de bihêle û) biterikîne! Bila bixwin û kêfa xwe bikin û bi hêvîyên pûç mijul bibin. (Çawa be jî ew dê heqîqetê) pir di nêz de bizanibin/fêm bikin.

**4.** Hetanî nivîsekî pêzan (ku aqûbeta wan di pêş de biryarkirî ye) nebe, me tu welatekî helak nekiriye.

**5.** Tu ummetek ne dikare ecelê xwe pêş ve bide û ne jî dikare paş de bimîne.

**6.** Gotin: “Hê ew ê ku zikir (Qur'an) li ser wî hatîye daxistin! Bi rastî tu dînekî ku bi cinan ketî yî.”

**7.** “Eger tu rast dibêjî ma ne hewce bû ku te ji me re melâîketan daxistana.”

**8.** Em melâîketan her bi heqî dadixînin. Wê gavê ew nayên sekinandin (di lehzê de wê bên helakkirin).

**9.** Bêguman me zikir/Qur'an nazil kiriye. Qet tu guman tune ku parêzvanê wê jî em bixwe ne.

**10.** Sond be, me ji wan ummetên berîya te re jî pêxemberan şandîye.

**11.** Çi dema pêxemberek ji wan re dihat, wan her tinazên xwe pê dikirin.

**12.** Ha wiha! Em wê (înkar û tinazkarîya bi pêxemberan re) dixin qalbê gunehkarên mucrîm.

**13.** Îmân pê naynin. (Hal ev e ku) rê û rêbazên pêşîyan borî/derbas bû. (Dizanin ku çi hatîye serê wan ên berîya wan, lê dîsa jî îmân naynin.)

**14.** Eger em ji bo wan li asîman derîyekî vekin û ew di wir de bilind bibin jî...

**15.** Qet tu guman tune ku (dê wiha bibêjin:) “Çavên me hatine perde kirin. (Nexêr,) dibe ku em civakeke ku bi sêhrê ketibin in.”

وَلَقَدْ جَعَلْنَا فِي السَّمَٓاءِ بُرُوجًا وَزَيَّنَّاهَا لِلنَّاظِرِينَۙ ﴿١٦﴾ وَحَفِظْنَاهَا
مِنْ كُلِّ شَيْطَانٍ رَجِيمٍۙ ﴿١٧﴾ اِلَّا مَنِ اسْتَرَقَ السَّمْعَ فَاَتْبَعَهُ
شِهَابٌ مُبِينٌ ﴿١٨﴾ وَالْاَرْضَ مَدَدْنَاهَا وَاَلْقَيْنَا فِيهَا رَوَاسِيَ وَاَنْبَتْنَا
فِيهَا مِنْ كُلِّ شَيْءٍ مَوْزُونٍ ﴿١٩﴾ وَجَعَلْنَا لَكُمْ فِيهَا مَعَايِشَ
وَمَنْ لَسْتُمْ لَهُ بِرَازِقِينَ ﴿٢٠﴾ وَاِنْ مِنْ شَيْءٍ اِلَّا عِنْدَنَا خَزَٓائِنُهُۘ
وَمَا نُنَزِّلُهُٓ اِلَّا بِقَدَرٍ مَعْلُومٍ ﴿٢١﴾ وَاَرْسَلْنَا الرِّيَاحَ لَوَاقِحَ فَاَنْزَلْنَا
مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَاَسْقَيْنَاكُمُوهُۚ وَمَٓا اَنْتُمْ لَهُ بِخَازِنِينَ ﴿٢٢﴾
وَاِنَّا لَنَحْنُ نُحْيِي وَنُمِيتُ وَنَحْنُ الْوَارِثُونَ ﴿٢٣﴾ وَلَقَدْ عَلِمْنَا
الْمُسْتَقْدِمِينَ مِنْكُمْ وَلَقَدْ عَلِمْنَا الْمُسْتَأْخِرِينَ ﴿٢٤﴾ وَاِنَّ
رَبَّكَ هُوَ يَحْشُرُهُمْۜ اِنَّهُ حَكِيمٌ عَلِيمٌ ﴿٢٥﴾ وَلَقَدْ خَلَقْنَا الْاِنْسَانَ
مِنْ صَلْصَالٍ مِنْ حَمَاٍ مَسْنُونٍۚ ﴿٢٦﴾ وَالْجَٓانَّ خَلَقْنَاهُ مِنْ قَبْلُ
مِنْ نَارِ السَّمُومِ ﴿٢٧﴾ وَاِذْ قَالَ رَبُّكَ لِلْمَلٰٓئِكَةِ اِنِّي خَالِقٌ بَشَرًا
مِنْ صَلْصَالٍ مِنْ حَمَاٍ مَسْنُونٍ ﴿٢٨﴾ فَاِذَا سَوَّيْتُهُ وَنَفَخْتُ فِيهِ
مِنْ رُوحِي فَقَعُوا لَهُ سَاجِدِينَ ﴿٢٩﴾ فَسَجَدَ الْمَلٰٓئِكَةُ كُلُّهُمْ
اَجْمَعُونَۙ ﴿٣٠﴾ اِلَّٓا اِبْلِيسَۜ اَبٰٓى اَنْ يَكُونَ مَعَ السَّاجِدِينَ ﴿٣١﴾

**16.** Sond be, me li asîman bircan çêkirin û me ew ji bo lênêrên mêzeker re xemilandîye.

**17.** Û me ew ji her şeytanê recimandî/qewirandî parastîye.

**18.** Lê belê ew ê ku bi dizî guhdarî dike (Ew ê dikin ku axaftinên ji alema melekût bidizin) ne têde. Agirekî biriqî û jandar dide pey wî.

**19.** Me rûyê erdê raxist. Me li wê derê (ji bo hevsengîyê) ji çiyayên zexm singan çikand û me her tişt li gorî pîvanekê li wir hêşîn kir.

**20.** Me ji bo we û ji bo wan (zindîyên din) ên ku hûn rizqê wan nikarin temîn bikin re navgînên/wasiteyên curbicur pêk anî.

**21.** Heçî tiştê heye xezîneyên/çavkanîyên wê li cem me ye. Lê em ji wê bi pîvanekî diyarkirî dadixînin.

**22.** Me bayên fetrûmeker/aşîker şandin. Me ji asîman av daxist û me we bi wê av da. Ew ê ku wê avê dixezinîne/depo dike ne hûn in.

**23.** Bêguman em, (belê em bixwe) vedijînin û dimirînin. Û yê ku (piştî mirina we ji tiştên ku li pey we dimînin re) dibe waris jî em in.

**24.** Sond be, em bi (qewm) ên di berîya we de (jîyîne) jî û bi ew ên (ku di pey we re) bên jî dizanin.

**25.** Bêguman ew ê ku wan (bivejîne û) di hizûra xwe de bicivîne Rabbê te ye. Bêşik Allah (xwedî hikum û hikmet) Hakîm û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**26.** Sond be, me însan ji hişkeherîyeke bêhndayî û reşeguherî xuliqand.

**27.** Me cinan jî (berîya xuliqandina însan) ji agireke (ku tesîra hindurê mirov dike û) bijehr xuliqandin.

**28.** Bi bîr bîne, Rabbê te ji melâîketan re gotibûn: "Bêşik ez ê ji hişkeherîyeke reşeguherî însanekî bixuliqînim."

**29.** "Dema ku min xuliqandina wî qedand û ji rûhê xwe pifkirê, hema ji wî re secde bikin."

**30.** Melâîket bi tevahî çûne secdê.

**31.** Îblîs ne têde! (Lewre) wî ligelhevîya secdebiran qebûl nekir.

قَالَ يَٓا اِبْلٖيسُ مَا لَكَ اَلَّا تَكُونَ مَعَ السَّاجِدٖينَ ﴿٣٢﴾ قَالَ
لَمْ اَكُنْ لِاَسْجُدَ لِبَشَرٍ خَلَقْتَهُ مِنْ صَلْصَالٍ مِنْ حَمَاٍ
مَسْنُونٍ ﴿٣٣﴾ قَالَ فَاخْرُجْ مِنْهَا فَاِنَّكَ رَجٖيمٌ ﴿٣٤﴾ وَاِنَّ عَلَيْكَ
اللَّعْنَةَ اِلٰى يَوْمِ الدّٖينِ ﴿٣٥﴾ قَالَ رَبِّ فَاَنْظِرْنٖٓي اِلٰى يَوْمِ يُبْعَثُونَ ﴿٣٦﴾
قَالَ فَاِنَّكَ مِنَ الْمُنْظَرٖينَ ﴿٣٧﴾ اِلٰى يَوْمِ الْوَقْتِ الْمَعْلُومِ ﴿٣٨﴾
قَالَ رَبِّ بِمَٓا اَغْوَيْتَنٖي لَاُزَيِّنَنَّ لَهُمْ فِي الْاَرْضِ وَلَاُغْوِيَنَّهُمْ
اَجْمَعٖينَ ﴿٣٩﴾ اِلَّا عِبَادَكَ مِنْهُمُ الْمُخْلَصٖينَ ﴿٤٠﴾ قَالَ هٰذَا صِرَاطٌ
عَلَيَّ مُسْتَقٖيمٌ ﴿٤١﴾ اِنَّ عِبَادٖي لَيْسَ لَكَ عَلَيْهِمْ سُلْطَانٌ
اِلَّا مَنِ اتَّبَعَكَ مِنَ الْغَاوٖينَ ﴿٤٢﴾ وَاِنَّ جَهَنَّمَ لَمَوْعِدُهُمْ اَجْمَعٖينَ ﴿٤٣﴾
لَهَا سَبْعَةُ اَبْوَابٍ لِكُلِّ بَابٍ مِنْهُمْ جُزْءٌ مَقْسُومٌ ﴿٤٤﴾
اِنَّ الْمُتَّقٖينَ فٖي جَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ﴿٤٥﴾ اُدْخُلُوهَا بِسَلَامٍ اٰمِنٖينَ ﴿٤٦﴾
وَنَزَعْنَا مَا فٖي صُدُورِهِمْ مِنْ غِلٍّ اِخْوَانًا عَلٰى سُرُرٍ
مُتَقَابِلٖينَ ﴿٤٧﴾ لَا يَمَسُّهُمْ فٖيهَا نَصَبٌ وَمَا هُمْ مِنْهَا بِمُخْرَجٖينَ ﴿٤٨﴾
نَبِّئْ عِبَادٖٓي اَنّٖٓي اَنَا الْغَفُورُ الرَّحٖيمُ ﴿٤٩﴾ وَاَنَّ عَذَابٖي
هُوَ الْعَذَابُ الْاَلٖيمُ ﴿٥٠﴾ وَنَبِّئْهُمْ عَنْ ضَيْفِ اِبْرٰهٖيمَ ﴿٥١﴾

**32.** Got: “Ya Îblîs! Çi tiştî nehişt ku tu bibî ligel secdebiran?

**33.** Got: “Ji min re nabe ez ji mirovekî ku te ew ji hişkeherî xuliqandîye re biçim secdê.”

**34.** Got: “Ji wir derkeve! Bêguman tu yekî qewirandî/recimandî yî.”

**35.** “Heta yewmud’dîn/roja qiyametê lanet li ser te ye.”

**36.** Got: “Rabbê min! Heta roja ku (însan) ji nû de tên vejandin muhletê bide min.”

**37.** Got: “Bêguman tu ji yên muhletdayîyan î.”

**38.** “Hetanî dema diyarkirî ku roja wê tê zanîn (roja qiyametê).”

**39.** Got: “Ji ber ku te ez xerifandim, ez ê jî li ser rûyê erdê ji wan re (rêşaşîtîyê) bixemilînim û ez ê wan hemûyan bixerifînim.”

**40.** “Lê evdên te yên muxlas/dilpak/xwedî îxlâs ne tê de.”

**41.** Rastîya vê rêyê ku ev rêyeke rasterast e, di bin ewlehîya min de ye.

**42.** Bi rastî tu hakimîyeta te li ser evdên min tune. (Hakimîyeta te) bitenê li ser rêşaşên didin pey te ne.

**43.** Bêguman, cihê lihevcivîna wan hemûyan cehennem e.

**44.** Heft derîyên wê hene. Ji nav wan her komek para derîyekî ye (dê ji wê derîyê têkevin cehennemê).

**45.** Bêguman kesên mutteqî, di cennetan de û li ser kanîyan e.

**46.** (Ji wan re wiha tê gotin:) “Bi silametî û emînî têkevin wê derê.”

**47.** Me (hestên neyînî wekî) rik/neyartî/hêrs ji singên wan derxistin. Bi rastî ew li hember hev li ser textan wek birayan runiştî ne.

**48.** Li wir ji wan re qet betilandin tune û ji wir nayin derxistin jî.

**49.** Agahîyê bide evdên min. Bêguman ez (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm bixwe me.

**50.** Û bêguman ezabê min jî ezabekî biêş û jan bixwe ye.

**51.** Tu agahîya mêvanên Îbrahîm jî bide wan.

اِذْ دَخَلُوا عَلَيْهِ فَقَالُوا سَلَامًاۜ قَالَ اِنَّا مِنْكُمْ وَجِلُونَ ﴿٥٢﴾
قَالُوا لَا تَوْجَلْ اِنَّا نُبَشِّرُكَ بِغُلَامٍ عَلٖيمٍ ﴿٥٣﴾ قَالَ اَبَشَّرْتُمُونٖي
عَلٰٓى اَنْ مَسَّنِيَ الْكِبَرُ فَبِمَ تُبَشِّرُونَ ﴿٥٤﴾ قَالُوا بَشَّرْنَاكَ بِالْحَقِّ
فَلَا تَكُنْ مِنَ الْقَانِطٖينَ ﴿٥٥﴾ قَالَ وَمَنْ يَقْنَطُ مِنْ رَحْمَةِ رَبِّهٖٓ
اِلَّا الضَّٓالُّونَ ﴿٥٦﴾ قَالَ فَمَا خَطْبُكُمْ اَيُّهَا الْمُرْسَلُونَ ﴿٥٧﴾
قَالُٓوا اِنَّٓا اُرْسِلْنَٓا اِلٰى قَوْمٍ مُجْرِمٖينَۙ ﴿٥٨﴾ اِلَّٓا اٰلَ لُوطٍۜ اِنَّا لَمُنَجُّوهُمْ
اَجْمَعٖينَۙ ﴿٥٩﴾ اِلَّا امْرَاَتَهُ قَدَّرْنَٓاۙ اِنَّهَا لَمِنَ الْغَابِرٖينَ ﴿٦٠﴾
فَلَمَّا جَٓاءَ اٰلَ لُوطٍ الْمُرْسَلُونَۙ ﴿٦١﴾ قَالَ اِنَّكُمْ قَوْمٌ مُنْكَرُونَ ﴿٦٢﴾
قَالُوا بَلْ جِئْنَاكَ بِمَا كَانُوا فٖيهِ يَمْتَرُونَ ﴿٦٣﴾ وَاَتَيْنَاكَ
بِالْحَقِّ وَاِنَّا لَصَادِقُونَ ﴿٦٤﴾ فَاَسْرِ بِاَهْلِكَ بِقِطْعٍ مِنَ الَّيْلِ
وَاتَّبِعْ اَدْبَارَهُمْ وَلَا يَلْتَفِتْ مِنْكُمْ اَحَدٌ وَامْضُوا حَيْثُ
تُؤْمَرُونَ ﴿٦٥﴾ وَقَضَيْنَٓا اِلَيْهِ ذٰلِكَ الْاَمْرَ اَنَّ دَابِرَ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ
مَقْطُوعٌ مُصْبِحٖينَ ﴿٦٦﴾ وَجَٓاءَ اَهْلُ الْمَدٖينَةِ يَسْتَبْشِرُونَ ﴿٦٧﴾
قَالَ اِنَّ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ ضَيْفٖي فَلَا تَفْضَحُونِۙ ﴿٦٨﴾ وَاتَّقُوا اللّٰهَ
وَلَا تُخْزُونِ ﴿٦٩﴾ قَالُٓوا اَوَلَمْ نَنْهَكَ عَنِ الْعَالَمٖينَ ﴿٧٠﴾

**52.** Dema çûn cem wî, gotin: “Silav!” (Îbrahîm jî) got: “Bi rastî em ji we ditirsin.”

**53.** Gotin: “Netirse. Em mizgîna kurekî pir zana didin te.”

**54.** Got: “Erê ma piştî vê pîremêrîtîya/kalîtîya hatîye serê min, hûn mizgînî (ya zarokekî) didin min? (Hûn dizanin ka) hûn bi çi mizgînîyê didin min?”

**55.** Gotin: “Me mizgînîya heqîyê da te. (Nexwe) nebe ji wan ên bêhêvî.”

**56.** Got: “Ji kesên xerifî pê ve kî ji rehma Rabbê xwe bêhêvî dimîne?”

**57.** Got: “Gelî qasidan! Wezîfa we çi ye?”

**58.** Gotin: “Bêşik em ji qewmekî gunehkarên mucrîm/sûcdar re hatine şandin.”

**59.** “Malbata Lût ne tê de. Helbet em ê wan hemûyan xelas bikin.”

**60.** “Lê jina wî (jina Lût) ne tê de. Lewre me teqdîr kirîye ku ew ji şûndemanan e.”

**61.** Dema qasid hatin cem malbata Lût:

**62.** Got: “Birastî hûn kesên nenas in.”

**63.** Gotin: “(Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, me ji wan re ew (ezab) a ku wan der heqê hatina wî de nîqaş dikirin û gumanbar bûn anî.”

**64.** “Me ji te re heqî anî. Û em, helbet ji rastgoyan/ji sadiqan in.”

**65.** “Di demeke şevê de malbata xwe derxe rê. Tu jî bide pey wan. Bila ji we tu kes li paş xwe nenêre. Bi wê cihê ku hûn pê hatine emirkirin ve bidomînin.”

**66.** Me jê re vê hukmê misoger/qethî ragihand ku: “Wê bi berê sibê re paşîya wan bê birîn (koka wan bê qelandin).”

**67.** Ehlê bajêr (ji ber hatina mêvanên xort mizgînî didan hevdu û) di nav kêfxweşîyê de hatin.

**68.** Got: “Evana mêvanên min in. Min li ber wan nedin şermê û nexin ser zimanê wan.”

**69.** “Ji Allah bitirsin û min nehetikînin.”

**70.** Gotin: ““Gelo ji bo ku tu tevlî karê xelkê nebî me te asteng/men nekiribû?”

قَالَ هٰٓؤُلَٓاءِ بَنَاتٖٓي اِنْ كُنْتُمْ فَاعِل۪ينَ ﴿٧١﴾ لَعَمْرُكَ اِنَّهُمْ
لَف۪ي سَكْرَتِهِمْ يَعْمَهُونَ ﴿٧٢﴾ فَاَخَذَتْهُمُ الصَّيْحَةُ مُشْرِق۪ينَ ﴿٧٣﴾
فَجَعَلْنَا عَالِيَهَا سَافِلَهَا وَاَمْطَرْنَا عَلَيْهِمْ حِجَارَةً مِنْ سِجّ۪يلٍ ﴿٧٤﴾
اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِلْمُتَوَسِّم۪ينَ ﴿٧٥﴾ وَاِنَّهَا لَبِسَب۪يلٍ مُق۪يمٍ ﴿٧٦﴾
اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِلْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٧٧﴾ وَاِنْ كَانَ اَصْحَابُ الْاَيْكَةِ
لَظَالِم۪ينَ ﴿٧٨﴾ فَانْتَقَمْنَا مِنْهُمْ وَاِنَّهُمَا لَبِاِمَامٍ مُب۪ينٍ ﴿٧٩﴾ وَلَقَدْ كَذَّبَ
اَصْحَابُ الْحِجْرِ الْمُرْسَل۪ينَ ﴿٨٠﴾ وَاٰتَيْنَاهُمْ اٰيَاتِنَا فَكَانُوا عَنْهَا
مُعْرِض۪ينَ ﴿٨١﴾ وَكَانُوا يَنْحِتُونَ مِنَ الْجِبَالِ بُيُوتًا اٰمِن۪ينَ ﴿٨٢﴾
فَاَخَذَتْهُمُ الصَّيْحَةُ مُصْبِح۪ينَ ﴿٨٣﴾ فَمَٓا اَغْنٰى عَنْهُمْ مَا كَانُوا
يَكْسِبُونَ ﴿٨٤﴾ وَمَا خَلَقْنَا السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَٓا
اِلَّا بِالْحَقِّ وَاِنَّ السَّاعَةَ لَاٰتِيَةٌ فَاصْفَحِ الصَّفْحَ الْجَم۪يلَ ﴿٨٥﴾
اِنَّ رَبَّكَ هُوَ الْخَلَّاقُ الْعَل۪يمُ ﴿٨٦﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَاكَ سَبْعًا مِنَ الْمَثَان۪ي
وَالْقُرْاٰنَ الْعَظ۪يمَ ﴿٨٧﴾ لَا تَمُدَّنَّ عَيْنَيْكَ اِلٰى مَا مَتَّعْنَا بِه۪ٓ اَزْوَاجًا
مِنْهُمْ وَلَا تَحْزَنْ عَلَيْهِمْ وَاخْفِضْ جَنَاحَكَ لِلْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٨٨﴾ وَقُلْ
اِنّ۪ٓي اَنَا النَّذ۪يرُ الْمُب۪ينُ ﴿٨٩﴾ كَمَٓا اَنْزَلْنَا عَلَى الْمُقْتَسِم۪ينَ ﴿٩٠﴾

**71.** Got: “Eger hûn dixwazin tiştekî bikin va ne keçên min (bi wan re bizewicin!).”

**72.** Bi umrê te/bi jiyana te sond be ew di nav serxweş bûnê de bi sergêjane diçûn û dihatin.

**73.** (Axir) dema hilhatina rojê de qîrînek bi wan girt.

**74.** Me ew der serûbinî hev kir. Di ser wan de kevirên ji letama pijandî barandin.

**75.** Bêşik di vêya de ji kesên xwedî besîret û feraset re (ji bo îbretgirtinê) ayet hene.

**76.** Kavilên wê (bajarê) hêj jî li ser rêyekî dimîne.

**77.** Bêguman di vêya de ji bo mumînan ayet (ên ders jê bên girtin) hene.

**78.** Xelkê Eykê jî qet guman tune ku kesên zalim bûn.

**79.** Me ji wan heyf sitend. Her du jî li ser rêyekî (li ber çava) ne.

**80.** Sond be, xelkê Hicrê jî wan (pêxember) ên mursel/şandî derewandin.

**81.** Me ayetên xwe dane wan. Ji wê rû vegerandin (li hember wê bêeleqe/guhnedêr man).

**82.** Wan ji bo xwe ji çiyan xanîyên ewle (ku tê de runin) dinecirandin/teraş dikirin.

**83.** Di çaxê hilhatina rojê de qîrînek (ku guhan ker dike û mejîyan diteqîne) bi wan girt.

**84.** Tiştên ku bi dest xistibûn ewana (ji ezabê Allah) xelas nekir.

**85.** Me erd û esman û tiştên di navbera her duyan de, enceq bi heq (ji bo heq derkeve holê û nîşandana qudreta Allah û mikafat dayîna li gorî amelên însanan) xuliqandîye. Teqez wê seat/qiyamet rabe. (Herwiha) li hember wan bi xweşî (bi helwestekî xweşbînî û efûkerî) muamele bike.
(Ji bo meqseda xuliqandinê bnr. 38/Sâd, 27.)

**86.** Bêguman Rabbê te (ew ê pir dixuliqîne) Xellaq û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**87.** Sond be, me heft ayetên têne dubarekirin/sebu’l mesanî (Sûreya Fatîhe) û Qur'ana azîm/mezin da te.

**88.** (Bi wê Qur'ana ji te re nazil bûye têr bike/qîma xwe bîne.) Nebe tu çavên xwe berdî ew tiştên ji bo sûdwergirtinê me daye wan (kafiran). Li ser wan xemgîn nebe û mumînan jî têxe bin baskên (şefqeta) xwe.

**89.** Bibêje: “Bêşik ez, (belê) ez her hişyarkerekî vikîvekirî me.”

**90.** Çawa ku me ji wan ên parve kiribûn re daxistibû.
(Di hevoka “ên parve kiribûn...” de meqset ev e; dibe ku muxetebê yekem a vê ayetê Qureyş e. Lewre ew (Qewmê Qureyşîyan) der heqê Qur'anê de kom bi kom ji hev cuda bibûn û xwedî ramanên curbicur bûn. Hin ji wan Qur'anê wek sêhr binav dikirin û hinan digotin ev şîîr e/helbest e û hinan digotin ev berbêjî ye û hinan jî digotin ev çîrokên berê ne...
Di heman demê de qesta vê ayetê dibe ku Ehlê Kitêb in. Lewre ewana ji xeynî wehîyê hin Kitêban nivîsandibûn û paşê li dor van Kitêban kom bi kom ji hevdû veqetîya bûn.) (Bnr. 23/Mu’mînûn, 53)

الَّذِينَ جَعَلُوا الْقُرْاٰنَ عِضِينَ ﴿٩١﴾ فَوَرَبِّكَ لَنَسْـَٔلَنَّهُمْ اَجْمَعِينَۙ ﴿٩٢﴾
عَمَّا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٩٣﴾ فَاصْدَعْ بِمَا تُؤْمَرُ وَاَعْرِضْ
عَنِ الْمُشْرِكِينَ ﴿٩٤﴾ اِنَّا كَفَيْنَاكَ الْمُسْتَهْزِئِينَۙ ﴿٩٥﴾ اَلَّذِينَ يَجْعَلُونَ
مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَۚ فَسَوْفَ يَعْلَمُونَ ﴿٩٦﴾ وَلَقَدْ نَعْلَمُ اَنَّكَ
يَضِيقُ صَدْرُكَ بِمَا يَقُولُونَۙ ﴿٩٧﴾ فَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ وَكُنْ
مِنَ السَّاجِدِينَۙ ﴿٩٨﴾ وَاعْبُدْ رَبَّكَ حَتّٰى يَأْتِيَكَ الْيَقِينُ ﴿٩٩﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
اَتٰٓى اَمْرُ اللّٰهِ فَلَا تَسْتَعْجِلُوهُۜ سُبْحَانَهُ وَتَعَالٰى عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿١﴾
يُنَزِّلُ الْمَلٰٓئِكَةَ بِالرُّوحِ مِنْ اَمْرِه۪ عَلٰى مَنْ يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِه۪ٓ
اَنْ اَنْذِرُٓوا اَنَّهُ لَٓا اِلٰهَ اِلَّٓا اَنَا فَاتَّقُونِ ﴿٢﴾ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ
بِالْحَقِّۜ تَعَالٰى عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٣﴾ خَلَقَ الْاِنْسَانَ مِنْ نُطْفَةٍ فَاِذَا هُوَ
خَص۪يمٌ مُب۪ينٌ ﴿٤﴾ وَالْاَنْعَامَ خَلَقَهَاۚ لَكُمْ ف۪يهَا دِفْءٌ وَمَنَافِعُ وَمِنْهَا
تَأْكُلُونَۖ ﴿٥﴾ وَلَكُمْ ف۪يهَا جَمَالٌ ح۪ينَ تُر۪يحُونَ وَح۪ينَ تَسْرَحُونَۖ ﴿٦﴾

**91.** Ew in ku (Bawerîya bi qismekî û redkirina bi qismekî jê) Qur'an parçe parçe ji hev veqetandin.

**92.** Sond bi Rabbê te be, em ê wan hemûyan bikişîn hisabê.

**93.** Ji ber kirinên wan...

**94.** Tiştê ku tu pê hatî emirkirin (tewhîdê), êdî bi eşkerehî têxe holê û ji muşrîkan rû vegerîne.

(Ev ayet bi eşkerehî têxe holê ku daweta tewhîdê ka divê çawa çêbe. Keyfîyeta dawetê bi lêkera ( صدع ) "sa-de-a hatîye vegotin. Hilbijartina vê peyvê pir giring e, lewre ev peyv tê ser wateya qelişandina tiştekî an vekirin an derizandin an serê sibê an jî êşa ser e. Rabbê me vêya daxwaz dike ku; tewhîd vikîvekirî û bi qelişandina tarîtîyên batilê û bi awayekî wisan pêk bê ku hem rehetîya dawetvan hem jî konfora muxeteban xera bibe têkeve holê. Dîsa bi vegotina Qur'anê daweteke wisan tê xwestin ku; ev dawet wê şirk ji mêjîyê wî bigire û biperçiqîne. (Bnr. 21/Enbîya, 18))

**95.** Em li dij wan kesên ku tinazê xwe bi te dikin, besî te ne.

**96.** Ew ên ku ligel Allah hin îlâhên din digirin. Wê (di demeke) pir nêz de bizanibin/fêm bikin.

**97.** Sond be, em dizanin ku ji ber gotinên wan (pir aciz dibî) singa te teng dibe.

**98.** (Ji bo ku tu ji vê tengezarîyê xelas bibî) Rabbê xwe bi hemd tesbîh bike û bibe ji secdebiran.

(Ji bo helwesta rabbanî ya li dij ezîyetên muşrîkan bnr. 20/Tâ-Hâ,130.)

**99.** Heta yeqîn (mirin) ji te re tê ji Rabbê xwe re îbadet/evdîtî bike!




## 16. SÛREYA NAHL

*(Sûreya Nahl, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sed û bîst û heşt (128) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya şazdehem e. Di vê sûreyê de behsa mêşhingiv tê kirin û mêşhingiv wek berhema qudreta îlahî ka çawa wê hingivê çêdike tê vegotin. Ji ber ku di ayeta 68. de ji mêşhingiv tê behskirin wek sûreya Nahl hatîye binavkirin. Nahl, tê ser maneya mêşhingiv. Herwisa ev sûre mijarên delîlên heyînî û wehdanîyeta Allah (ac) nîşan didin û vejîna piştî mirinê jî di naveroka xwe de vedihewîne.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim).*

**1.** Emrê Allah hat/wê bê. Ji bo zûhatina wî nelezînin. Ew (Allah) ji wan tiştên ku pê şirîkatîyê dikin munezzeh e, berz/bilind e.

**2.** Ji evdên xwe kî bixwaze bi rûh/bi wehîy melâîketan jê re dadixîne û wiha emir dike ku (wan kafiran wisan) hişyar bikin: "Ji min pê ve (yê ku îbadetê heq dike) îlâh tune, (herwisa) ji min bitirsin û xwe biparêzin."

**3.** (Wî) erd û esman bi heq xuliqandîye. Ji tiştên ku ew pê şirîkatîyê dikin berztir e.

**4.** (Wî) însan ji nûtfeyekê/avikê xuliqand. (Lê tu çi bibînî!) Ew (însan li dij xaliqê xwe) bûye dijminekî eşkere.

**5.** Û (wî) heywanan jî xuliqand. Di wan de ji bo we (bi libasên ji hirîyên wan) germbûn û feyde (yên din) hene. Û hûn ji wan dixwin.

**6.** Dema hûn wan serê sibê berdidin û (paşê wan) êvarê tînin, ji we re xweşîyeke (hêjayê temaşeyê) heye.

وَتَحْمِلُ اَثْقَالَكُمْ اِلٰى بَلَدٍ لَمْ تَكُونُوا بَالِغٖيهِ
اِلَّا بِشِقِّ الْاَنْفُسِۜ اِنَّ رَبَّكُمْ لَرَؤُ۫فٌ رَحٖيمٌۙ ٧
وَالْخَيْلَ وَالْبِغَالَ وَالْحَمٖيرَ لِتَرْكَبُوهَا وَزٖينَةًۜ وَيَخْلُقُ
مَا لَا تَعْلَمُونَ ٨ وَعَلَى اللّٰهِ قَصْدُ السَّبٖيلِ وَمِنْهَا جَٓائِرٌۜ
وَلَوْ شَٓاءَ لَهَدٰيكُمْ اَجْمَعٖينَ ٩ هُوَ الَّذٖٓي اَنْزَلَ
مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً لَكُمْ مِنْهُ شَرَابٌ وَمِنْهُ شَجَرٌ
فٖيهِ تُسٖيمُونَ ١٠ يُنْبِتُ لَكُمْ بِهِ الزَّرْعَ وَالزَّيْتُونَ
وَالنَّخٖيلَ وَالْاَعْنَابَ وَمِنْ كُلِّ الثَّمَرَاتِۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ
لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ ١١ وَسَخَّرَ لَكُمُ الَّيْلَ
وَالنَّهَارَۙ وَالشَّمْسَ وَالْقَمَرَۜ وَالنُّجُومُ مُسَخَّرَاتٌ بِاَمْرِهٖۜ اِنَّ
فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَۙ ١٢ وَمَا ذَرَاَ لَكُمْ فِي الْاَرْضِ
مُخْتَلِفًا اَلْوَانُهُۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَذَّكَّرُونَ ١٣
وَهُوَ الَّذٖي سَخَّرَ الْبَحْرَ لِتَاْكُلُوا مِنْهُ لَحْمًا طَرِيًّا
وَتَسْتَخْرِجُوا مِنْهُ حِلْيَةً تَلْبَسُونَهَاۚ وَتَرَى الْفُلْكَ مَوَاخِرَ
فٖيهِ وَلِتَبْتَغُوا مِنْ فَضْلِهٖ وَلَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ١٤

**7.** Û giranîyên barê we hildigirin û dikişînin welatên wisan ku (eger ew nebûna) beyî telefbûna nîvê canê xwe we nikaribû bigihînin wan deran. Bêguman Rabbê we, li ser evdên xwe (pir bi şefqet) Raûf û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**8.** Ji bo siwarîya we û ji bo ku ji we re bibin xeml, hespan û hêstiran û keran xuliqand. Û tiştên ku hûn pê nizanin jî dixuliqîne.

**9.** Ravekirin û nîşandayîna rêya rast (ji însanan re) aîdê Allah e. (Ji wan rêyan) hinek jî xwar in. (Mirov nagihîne heqîyê.) Eger (Allah) daxwaz bikira, helbet dê we hemûyan bigihandana hîdayetê.

**10.** Ew ê ji bo we ji asîman av dadixîne ew e. (Ji wê avê) ji bo we vexwarin û (ji bo heywanên we jî) çêre heye. Û (hûn heywanên xwe di wê çêregehê de) berdidin/diçêrînin.

**11.** Bi wê (avê) ji bo we çandinî û zeytûn û xurme û her cureyên fêkîyan heşîn dike. Bêguman ji bo qewmekî difikirin re di vê de ayet (ên elametê lutf û îhsana Allah) hene.

**12.** Şev û roj û tav û hîv ji bo (xizmeta) we amade kiriye. Stêrk jî bi emrê wî (ji însanan re) stuxwar in. Bêguman di vê de ji bo qewmekî aqilmend re ayet hene.

**13.** Hemû tiştên (hêşînahîyên) li ser rûyê erdê ku rengereng in ji bo we xuliqand (û belav kir û xist bin xizmeta we.) Bêguman di vê de ji bo qewmekî şîret digire re ayet hene.

**14.** Ji bo ku hûn goştê teze jê bixwin û zînetan jê derînin wî behr xistîye ber xizmeta we. Tu dibînî ku keştî (avê) diqelişînin û li ser dikişin. (Evana) hemû ji bo we ne ku hûn li lutf û îhsana Allah bigerin û jê re şikur bikin.

وَاَلْقٰى فِى الْاَرْضِ رَوَاسِىَ اَنْ تَمٖيدَ بِكُمْ وَاَنْهَارًا وَسُبُلًا
لَعَلَّكُمْ تَهْتَدُونَۙ ﴿١٥﴾ وَعَلَامَاتٍۜ وَبِالنَّجْمِ هُمْ يَهْتَدُونَ ﴿١٦﴾
اَفَمَنْ يَخْلُقُ كَمَنْ لَا يَخْلُقُۜ اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ﴿١٧﴾
وَاِنْ تَعُدُّوا نِعْمَةَ اللّٰهِ لَا تُحْصُوهَاۜ اِنَّ اللّٰهَ لَغَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿١٨﴾
وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مَا تُسِرُّونَ وَمَا تُعْلِنُونَ ﴿١٩﴾ وَالَّذٖينَ يَدْعُونَ
مِنْ دُونِ اللّٰهِ لَا يَخْلُقُونَ شَيْـًٔا وَهُمْ يُخْلَقُونَۜ ﴿٢٠﴾
اَمْوَاتٌ غَيْرُ اَحْيَٓاءٍۚ وَمَا يَشْعُرُونَۙ اَيَّانَ يُبْعَثُونَ ﴿٢١﴾ اِلٰهُكُمْ
اِلٰهٌ وَاحِدٌۚ فَالَّذٖينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ قُلُوبُهُمْ مُنْكِرَةٌ وَهُمْ
مُسْتَكْبِرُونَ ﴿٢٢﴾ لَا جَرَمَ اَنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ مَا يُسِرُّونَ
وَمَا يُعْلِنُونَۜ اِنَّهُ لَا يُحِبُّ الْمُسْتَكْبِرٖينَ ﴿٢٣﴾ وَاِذَا قٖيلَ
لَهُمْ مَاذَٓا اَنْزَلَ رَبُّكُمْۙ قَالُٓوا اَسَاطٖيرُ الْاَوَّلٖينَۙ ﴿٢٤﴾ لِيَحْمِلُٓوا
اَوْزَارَهُمْ كَامِلَةً يَوْمَ الْقِيٰمَةِۙ وَمِنْ اَوْزَارِ الَّذٖينَ يُضِلُّونَهُمْ
بِغَيْرِ عِلْمٍۜ اَلَا سَٓاءَ مَا يَزِرُونَ ﴿٢٥﴾ قَدْ مَكَرَ الَّذٖينَ مِنْ قَبْلِهِمْ
فَاَتَى اللّٰهُ بُنْيَانَهُمْ مِنَ الْقَوَاعِدِ فَخَرَّ عَلَيْهِمُ السَّقْفُ
مِنْ فَوْقِهِمْ وَاَتٰيهُمُ الْعَذَابُ مِنْ حَيْثُ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٢٦﴾

**15.** (Wî) ji bo ku we nehejîne li ser rûyê erdê (ji çiyan) singan çikand û ji bo ku hûn rêya xwe bibînin jî çeman û rêyan xuliqand.

**16.** (Ji bo ku hûn rêya xwe bibînin hin) elametên din (bi cih kir). Ew bi stêrkan jî rêyên xwe sererast dikin/dibînin.

**17.** Erê ma ew ê dixuliqîne qet dibe wekî wî yê ku naxuliqîne? Ma hûn qet şîret nagirin?

**18.** Eger hûn bixwazin nîmetên Allah bijmêrin, hûn nikarin wan (nîmetan) dorpêç bikin/bijmêrin. Bêguman Allah (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**19.** Allah bi tiştên ku hûn vedişêrin jî û eşkere jî dikin dizane.

**20.** Ji xeynî Allah ew ên ku ji wan re dûa dikin, qet nikarin tiştekî bixuliqînin. Ew bixwe xuliqandî ne.

**21.** (Ew) mirî ne, ne zindî ne. Nizanin wê kengê bên vejandin jî.

**22.** Îlâhê we yek îlâhek tenê ye. Ew ên ku îmân bi axîretê naynin qelbê wan înkar dike û ew quretîyê dikin.

**23.** Çare tune! Bêguman Allah tiştên ku vedişêrin û eşkere dikin jî dizane. Bêşik ew, ji kesên qure hez nake.

**24.** Dema ji wan re tê gotin: “Rabbê we çi nazil kiriye?” dibêjin: “Çîrokên berê!”

**25.** (Gotina wan a vê peyvê) ji bo ku roja qiyametê hemû gunehên xwe û qismek gunehên wan kesên li ser nezanînê xerifandine hilgirin. Dîqat bikin/bala xwe bidin, tiştê ku hilgirtine çi qas xerab e!

**26.** Muheqeq ew ên berîya wan jî kemînan danîn. Allah avahîya wan ji bin ve xera kir û tawan/arîk di ser wan de hate xwarê û ezab jî ji ciheke qet hêvî nedikirin de bi ser wan de hat.

ثُمَّ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ يُخْزِيهِمْ وَيَقُولُ اَيْنَ شُرَكَٓائِيَ الَّذِينَ كُنْتُمْ
تُشَٓاقُّونَ فِيهِمْۜ قَالَ الَّذِينَ اُوتُوا الْعِلْمَ اِنَّ الْخِزْيَ الْيَوْمَ
وَالسُّٓوءَ عَلَى الْكَافِرِينَۙ ﴿٢٧﴾ اَلَّذِينَ تَتَوَفّٰيهُمُ الْمَلٰٓئِكَةُ
ظَالِمٖٓي اَنْفُسِهِمْۖ فَاَلْقَوُا السَّلَمَ مَا كُنَّا نَعْمَلُ مِنْ سُٓوءٍۜ
بَلٰٓى اِنَّ اللّٰهَ عَلِيمٌ بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٢٨﴾ فَادْخُلُٓوا اَبْوَابَ
جَهَنَّمَ خَالِدِينَ فِيهَاۜ فَلَبِئْسَ مَثْوَى الْمُتَكَبِّرِينَ ﴿٢٩﴾ وَقِيلَ
لِلَّذِينَ اتَّقَوْا مَاذَٓا اَنْزَلَ رَبُّكُمْۜ قَالُوا خَيْرًاۜ لِلَّذِينَ اَحْسَنُوا
فٖي هٰذِهِ الدُّنْيَا حَسَنَةٌۜ وَلَدَارُ الْاٰخِرَةِ خَيْرٌۜ وَلَنِعْمَ دَارُ الْمُتَّقٖينَۙ ﴿٣٠﴾
جَنَّاتُ عَدْنٍ يَدْخُلُونَهَا تَجْرٖي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ لَهُمْ فٖيهَا
مَا يَشَٓاؤُنَۜ كَذٰلِكَ يَجْزِي اللّٰهُ الْمُتَّقٖينَۙ ﴿٣١﴾ اَلَّذٖينَ تَتَوَفّٰيهُمُ
الْمَلٰٓئِكَةُ طَيِّبٖينَۙ يَقُولُونَ سَلَامٌ عَلَيْكُمُۙ ادْخُلُوا الْجَنَّةَ
بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٣٢﴾ هَلْ يَنْظُرُونَ اِلَّٓا اَنْ تَاْتِيَهُمُ
الْمَلٰٓئِكَةُ اَوْ يَاْتِيَ اَمْرُ رَبِّكَۜ كَذٰلِكَ فَعَلَ الَّذٖينَ مِنْ قَبْلِهِمْۜ
وَمَا ظَلَمَهُمُ اللّٰهُ وَلٰكِنْ كَانُٓوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ ﴿٣٣﴾ فَاَصَابَهُمْ
سَيِّئَاتُ مَا عَمِلُوا وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِهٖ يَسْتَهْزِؤُنَ ﴿٣٤﴾

**27.** Paşê (Allah) roja qiyametê dê wan riswa bike û bibêje: “Ew şirîkên min (ên we ji min re çêdikirin) û we ji bo wan (bi mumînan re) pozberî/berberî dikirin ka li ku ne?” Ew ên ku ji wan re ilim hatîye jî dibêjin: “Riswatî û xerabî îro li ser kafiran e.”

**28.** Dema melâîket canê wan kesên ku li nefsa xwe zilim dikin distînin, dibêjin: “Me qet tu xerabî nedikir” û mil datînin/teslîm dibin. (Nexêr, ne wisan e!) Qet guman tune Allah, bi kar û kirinên ku we dikir, dizane.

**29.** Di derîyê wê de têkevin cehennemê, hûn ê tê de bêdawî bimînin. Warê qureyan çi qas xerab e.

**30.** Dema ji kesên mutteqî re tê gotin: “Rabbê we çi nazil kir?” dibêjin: “Xêr (nazil kir).” Di vê dinyayê de ji kesên qenc re (wek gerew) xweşikayî heye. Lê warê axîretê herî bi xêrtir e. Warê Muttegîyan çi qas xweş e.

**31.** Dikevin cennetên Adn ku di binê wan de çem diherikin û li wir her çi bixwazin ji wan re heye. Allah, xelata/mikafata Mutteqîyan a wiha dide.

**32.** Ew in ku; dema melâîket bi xweşî canê wan distînin dibêjin: “Silav li ser we be! Ji ber kar û kirinên xwe bikevin cennetê.”

**33.** (Ew ên li nefsa xwe zilim dikin) ma qey lihêvîya tiştekî din in ku melâîket ji wan re bên an jî emrê Rabbê wan ji wan ras were? Ew ên berîya wan jî wiha kiribûn. Allah, zilim li wan nekir. Lê wan zilim li xwe dikirin.

**34.** Amelên wan ên xerab (wek musîbet) hat serê wan. Tiştên ku tinazên xwe pê dikirin bi çaralî wan dorpêç kirin.

وَقَالَ الَّذِينَ اَشْرَكُوا لَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ مَا عَبَدْنَا مِنْ دُونِهِ مِنْ شَيْءٍ
نَحْنُ وَلَٓا اٰبَٓاؤُ۬نَا وَلَا حَرَّمْنَا مِنْ دُونِهِ مِنْ شَيْءٍۜ كَذٰلِكَ
فَعَلَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْۚ فَهَلْ عَلَى الرُّسُلِ اِلَّا الْبَلَاغُ الْمُبِينُ ﴿٣٥﴾
وَلَقَدْ بَعَثْنَا فِي كُلِّ اُمَّةٍ رَسُولًا اَنِ اعْبُدُوا اللّٰهَ
وَاجْتَنِبُوا الطَّاغُوتَۚ فَمِنْهُمْ مَنْ هَدَى اللّٰهُ وَمِنْهُمْ مَنْ حَقَّتْ
عَلَيْهِ الضَّلَالَةُۜ فَسِيرُوا فِي الْاَرْضِ فَانْظُرُوا كَيْفَ
كَانَ عَاقِبَةُ الْمُكَذِّبِينَ ﴿٣٦﴾ اِنْ تَحْرِصْ عَلٰى هُدٰيهُمْ
فَاِنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدِي مَنْ يُضِلُّ وَمَا لَهُمْ مِنْ نَاصِرِينَ ﴿٣٧﴾ وَاَقْسَمُوا
بِاللّٰهِ جَهْدَ اَيْمَانِهِمْۙ لَا يَبْعَثُ اللّٰهُ مَنْ يَمُوتُۜ بَلٰى وَعْدًا عَلَيْهِ
حَقًّا وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَۙ ﴿٣٨﴾ لِيُبَيِّنَ لَهُمُ الَّذِي
يَخْتَلِفُونَ فِيهِ وَلِيَعْلَمَ الَّذِينَ كَفَرُٓوا اَنَّهُمْ كَانُوا
كَاذِبِينَ ﴿٣٩﴾ اِنَّمَا قَوْلُنَا لِشَيْءٍ اِذَٓا اَرَدْنَاهُ اَنْ نَقُولَ لَهُ كُنْ
فَيَكُونُ ﴿٤٠﴾ وَالَّذِينَ هَاجَرُوا فِي اللّٰهِ مِنْ بَعْدِ مَا ظُلِمُوا
لَنُبَوِّئَنَّهُمْ فِي الدُّنْيَا حَسَنَةًۜ وَلَاَجْرُ الْاٰخِرَةِ اَكْبَرُۢ لَوْ كَانُوا
يَعْلَمُونَۙ ﴿٤١﴾ اَلَّذِينَ صَبَرُوا وَعَلٰى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ ﴿٤٢﴾

**35.** Ew ên şirîk çêdikirin gotin: “Eger Allah daxwaz bikira me û kalanên xwe ji wî pê ve ji tiştekî din re îbadet nedikir û me ji xeynî emrê wî tiştek heram nedikir.” Ew ên berî wan jî wiha kiribûn. Wezîfa pêxemberan, qey ji teblîxa eşkere pê ve tiştekî din e?

(Ew muşrîkên ku nikaribûn li dij daweta tewhîdê tiştekî bibêjin, berpirsîyarîya hemû xeta û gunehên xwe diavêtin ser daxwazîya/meşîeta Allah (ac) û qederparêzî dikirin. Wiha difikirin û digotin: “Eger Allah (ac) ji vê rewşa me ne razî bûna wê ji me lome bikira û me bida ber ezabê û ew qas derfetê ne dida me.” Allah (ac) piştî diyar kir ku ev ramana muşrîkan çewt e van gumanên wan wiha pûç û betal kir: “Eger Allah (ac) ji we û ji karên we razî bûna bi hinarîya eşkere pêxemberan ne dişand û we gazî îbadeta tenê ji Allah (ac) re û dûrbûna taxûtên ji xeynî wî ku hûn evdîtî li wan dikin nedikir.”)

**36.** Sond be, me ji her ummetê re ji bo ku bibêjin (teblîx bikin): “Ji Allah re îbadet/evdîtî bikin û xwe ji taxût biparêzin.” pêxemberek şand. Bi vî awayî Allah hinekên wan hîdayet kir û li ser hinek ji wan jî rêşaşîtî heq bû. Li ser rûyê erdê bigerin û aqûbeta derewkaran/mukezziban çawa bûye bibînin.

(Ji bo têgeha/qewrama Taxût bnr. 2/ Baqara, 256.)

**37.** Tu çi qas hîdayeta wan bixwazî jî Allah tu car kesên ku xerifandîye nagihîne hîdayetê. Alîkarê wan jî tunin.

**38.** Bi sondên asê sond xwarin û gotin: “Allah tu carî mirîyan navejîne.” (Nexêr, ne wisan e! Vejandina mirîya) weadeke heq e. Lê belê pirên însanan bi vêya nizanin.

**39.** Ji ber tiştên ku li ser îxtîlaf kirine ji wan re beyan bike û ji bo derewînbûna wan nîşanî wan bide (dê wan bivejîne).

**40.** Dema em daxwaza tiştekî bikin em tenê dibêjin: “Bibe!” ew jî hema çêdibe.

**41.** Ew ên piştî ku li wan zilim hatîye kirin û di rêya Allah de hîcret kirine, em ê (wan) li dinyayê di warekî xweşik de bi cih bikin. Lê xelata/mikafata axîretê herî mezintir e. Xwezî zanîbûna (lê kafir nizanin).

**42.** Ew (ehlê hîcretê) ku; sebir dikin û xwe spartine Rabbê xwe.

وَمَٓا اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ اِلَّا رِجَالًا نُوحٖٓي اِلَيْهِمْ فَسْـَٔلُٓوا اَهْلَ
الذِّكْرِ اِنْ كُنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَۙ ﴿٤٣﴾ بِالْبَيِّنَاتِ وَالزُّبُرِۜ وَاَنْزَلْنَٓا
اِلَيْكَ الذِّكْرَ لِتُبَيِّنَ لِلنَّاسِ مَا نُزِّلَ اِلَيْهِمْ وَلَعَلَّهُمْ يَتَفَكَّرُونَ ﴿٤٤﴾
اَفَاَمِنَ الَّذٖينَ مَكَرُوا السَّيِّـَٔاتِ اَنْ يَخْسِفَ اللّٰهُ بِهِمُ
الْاَرْضَ اَوْ يَأْتِيَهُمُ الْعَذَابُ مِنْ حَيْثُ لَا يَشْعُرُونَۙ ﴿٤٥﴾
اَوْ يَأْخُذَهُمْ فٖي تَقَلُّبِهِمْ فَمَا هُمْ بِمُعْجِزٖينَۙ ﴿٤٦﴾ اَوْ يَأْخُذَهُمْ
عَلٰى تَخَوُّفٍۜ فَاِنَّ رَبَّكُمْ لَرَؤُ۫فٌ رَحٖيمٌ ﴿٤٧﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا
اِلٰى مَا خَلَقَ اللّٰهُ مِنْ شَيْءٍ يَتَفَيَّؤُ۬ا ظِلَالُهُ عَنِ الْيَمٖينِ وَالشَّمَٓائِلِ
سُجَّدًا لِلّٰهِ وَهُمْ دَاخِرُونَ ﴿٤٨﴾ وَلِلّٰهِ يَسْجُدُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ
وَمَا فِي الْاَرْضِ مِنْ دَٓابَّةٍ وَالْمَلٰٓئِكَةُ وَهُمْ لَا يَسْتَكْبِرُونَ ﴿٤٩﴾ يَخَافُونَ
رَبَّهُمْ مِنْ فَوْقِهِمْ وَيَفْعَلُونَ مَا يُؤْمَرُونَ ﴿٥٠﴾ وَقَالَ اللّٰهُ لَا تَتَّخِذُٓوا
اِلٰهَيْنِ اثْنَيْنِۚ اِنَّمَا هُوَ اِلٰهٌ وَاحِدٌۚ فَاِيَّايَ فَارْهَبُونِ ﴿٥١﴾
وَلَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَلَهُ الدّٖينُ وَاصِبًاۜ اَفَغَيْرَ اللّٰهِ تَتَّقُونَ ﴿٥٢﴾
وَمَا بِكُمْ مِنْ نِعْمَةٍ فَمِنَ اللّٰهِ ثُمَّ اِذَا مَسَّكُمُ الضُّرُّ فَاِلَيْهِ تَجْـَٔرُونَۚ ﴿٥٣﴾
ثُمَّ اِذَا كَشَفَ الضُّرَّ عَنْكُمْ اِذَا فَرٖيقٌ مِنْكُمْ بِرَبِّهِمْ يُشْرِكُونَۙ ﴿٥٤﴾

**43.** Me berîya te ji zilaman pê ve wehîy nedabû kesekî din û (wek pêxember) neşandibû. Eger hûn nizanin ji ehlê zikrê (ku xwedî agahîya wehîyê ne) bipirsin.

**44.** (Me pêxemberan) bi delîlên eşkere û bi Kitêb (şand). Ji te re jî zikir/Qur'an nazil kir ku, tiştên ji wan re hatîye daxistin tu beyan bikî. Hêvî heye ku bifikirin.




(Du wezîfeya giring a pêxember (ass) wek arasteyî Qur'anê heye:
a. Bêkêmasî gihandina wê ya ji însanan re, yanê teblîx. (Bnr. 5/Maîde, 67)
b. Ravekirin û beyankirina Qur'ana daxistî/nazilbûyî. Tiştê ku gotin û helwestên Rasûlullah (ass) yanê sunneta wî bi rûmet dike jî ev e. Ew (ass), di bin muraqebeya Allah (ac) de di dirêjahîya bîst û sê sal ji alîkî ve ayetên nazil bûne ji însanan re dixwend û ji alîyê din ve jî bi gotin û helwestên xwe ve (bi sunnetê) diyar kiriye ku Allah ji van ayetan çi murad kiriye. Ji ber ku her du wezîfeyên xwe jî bi awayekî bê kêmasî û herî xweşik pêk anîye Allah (ac) wî di her mijarî de ji însanan re wek mîsal nîşan daye. (Bnr. 33/Ahzab, 21))

**45.** Ew ên ji bo xerabîyê (bikin) kemînan datînin, qey emîn in ku Allah wan binerd nake an jî ji cihekî ku haya wan jê tuneye ezab li ser wan naşîne?

**46.** An jî (ew emîn in ku) di çûn û vegera xwe de wê ezab bi wan ve negire? Ew nikarin (Allah) neçar/aciz bihêlin.

**47.** An jî (ew emîn in ku) hêj di nav tirsa (kêmkirina mal û can û amelên xwe) de ne, bi wan negire? Bêguman Rabbê te li ser evdên xwe (pir bi şefqet) Raûf û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**48.** Erê ma ew li tiştên (heyînên sîya wan heye) ku Allah xuliqandîye nanêrin? Sîya wan ji rast û çep ve tê veguhastin û ji (ezameta) Allah bi sitûxwarî secde dikin.

**49.** Li erd û esmanan hemû candar û melâîket ji Allah re secde dikin (û di secdevanîya Allah de) quretî nakin û xwe nadin paş.

**50.** Ew ji Rabbê xwe yê (bi zat û sifetên xwe herî bilind û) li ser wan e ditirsin. Û tiştên ku pê hatine emirkirin jî pêk tînin.

**51.** Allah got: “Du îlâhan negirin. Ew, yek îlâhek tenê ye. Enceq ji min bitirsin.”

**52.** Li erd û esmanan çi hebin bitemamî aîdê wî ne. Dînê mayînde jî (Îbadeta/Evdîtîya bênavber û serwerîya mutleq aîdê Allah e.) Ma hûn ê ji xeynî Allah ji tiştekî din bitirsin û xwe biparêzin?

**53.** Her çi nîmetê heye û digihîje we ji Allah e. Paşê dema tengezarîyek bi ser we de bê, hûn (di heman demê de) lavahîyê lê dikin.

**54.** Piştre dema ku wê tengezarîyê ji ser we radike, (tu dibînî ku) komek ji nav we ji Rabbê xwe re şirîkatîyê dikin.

لِيَكْفُرُوا بِمَٓا اٰتَيْنَاهُمْۜ فَتَمَتَّعُواۜ فَسَوْفَ تَعْلَمُونَ ﴿٥٥﴾ وَيَجْعَلُونَ
لِمَا لَا يَعْلَمُونَ نَص۪يبًا مِمَّا رَزَقْنَاهُمْۜ تَاللّٰهِ لَتُسْـَٔلُنَّ عَمَّا كُنْتُمْ
تَفْتَرُونَ ﴿٥٦﴾ وَيَجْعَلُونَ لِلّٰهِ الْبَنَاتِ سُبْحَانَهُۙ وَلَهُمْ مَا يَشْتَهُونَ ﴿٥٧﴾
وَاِذَا بُشِّرَ اَحَدُهُمْ بِالْاُنْثٰى ظَلَّ وَجْهُهُ مُسْوَدًّا وَهُوَ كَظ۪يمٌۚ ﴿٥٨﴾
يَتَوَارٰى مِنَ الْقَوْمِ مِنْ سُٓوءِ مَا بُشِّرَ بِه۪ۜ اَيُمْسِكُهُ
عَلٰى هُونٍ اَمْ يَدُسُّهُ فِي التُّرَابِۜ اَلَا سَٓاءَ مَا يَحْكُمُونَ ﴿٥٩﴾
لِلَّذ۪ينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ مَثَلُ السَّوْءِۚ وَلِلّٰهِ الْمَثَلُ الْاَعْلٰىۜ
وَهُوَ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُ ﴿٦٠﴾ وَلَوْ يُؤَاخِذُ اللّٰهُ النَّاسَ بِظُلْمِهِمْ
مَا تَرَكَ عَلَيْهَا مِنْ دَٓابَّةٍ وَلٰكِنْ يُؤَخِّرُهُمْ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّىۚ
فَاِذَا جَٓاءَ اَجَلُهُمْ لَا يَسْتَاْخِرُونَ سَاعَةً وَلَا يَسْتَقْدِمُونَ ﴿٦١﴾
وَيَجْعَلُونَ لِلّٰهِ مَا يَكْرَهُونَ وَتَص۪فُ اَلْسِنَتُهُمُ الْكَذِبَ
اَنَّ لَهُمُ الْحُسْنٰىۜ لَا جَرَمَ اَنَّ لَهُمُ النَّارَ وَاَنَّهُمْ مُفْرَطُونَ ﴿٦٢﴾ تَاللّٰهِ
لَقَدْ اَرْسَلْنَٓا اِلٰٓى اُمَمٍ مِنْ قَبْلِكَ فَزَيَّنَ لَهُمُ الشَّيْطَانُ اَعْمَالَهُمْ فَهُوَ
وَلِيُّهُمُ الْيَوْمَ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٦٣﴾ وَمَٓا اَنْزَلْنَا عَلَيْكَ الْكِتَابَ
اِلَّا لِتُبَيِّنَ لَهُمُ الَّذِي اخْتَلَفُوا ف۪يهِۙ وَهُدًى وَرَحْمَةً لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٦٤﴾

**55.** Ji bo ku ji (nîmet) ên me daye wan re nankorîyê bikin (wiha dikin). Kêfa xwe bikin! Hûn ê di pir nêz de (heqîqetê) bizanibin/fêmbikin.

**56.** Ji rizqê ku me daye wan, ji wan (îlâhên sexte) ku bi tiştekî nizanin re jî parekî vediqetînin. Sond bi navê Allah be, ji wan îftîrayên ku we lihev anîye hûn ê hisab bidin/bên pirsyarkirin.

**57.** (Digel) munezzeh e, ew (dibêjin ku) keçik aîdê Allah in, lê ya ku dilxwazê wî ne (zarokên kurîn jî) dikin para xwe.

**58.** Dema ji yekî ji wan re mizgîna keçekê (ku ji îsnad kirina Allah xwe ne didan paş) tê dayîn, rûyê wî tirş û tehl dibe û ji qehra dike ku bixinzire.

**59.** Ew ji ber xerabîya vê mizgînê (ji şerma) xwe ji qewmê xwe vedişêre. (Mejîyê wî tevlîhev e.) Wê digel kêmxistina di nava gelê xwe de keça xwe xwedî bike an jî wê binax bike? Dîqat bikin/bala xwe bidin! Çi xerab hikum didin.

**60.** Mîsala xerabîyê ji wan re ye ku bi axîretê îmân neanîne. Ji bo Allah jî mîsala herî bilind/mezin heye. Ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**61.** Eger Allah ji ber zilma ku însanan kiriye bidarizîne/muhakeme bike li ser rûyê erdê qet tu candarek nedihişt. Lê ew, heta demeke diyarkirî wan dide paş. Dema ecelê wan were ne seatekî paş de dimînin û ne jî seatekî pêş de diçin.

**62.** Tiştên ku li xweşa wan naçe îsnadî Allah dikin. Zimanê wan jî bi derewan çelengîyên wisan dikin ku ew dibêjin jixwe her tiştê xweşik aîdê wan e. Bêguman ji wan re agir heye û ew wê di pêşîya herkesî de têkevin ê.

**63.** Qesem bi Allah be, me ji ummetên berîya te re jî (pêxemberan) şandin. Şeytan amelên wan ji wan re xemilandî nîşan da. Ew, îro jî welîyê/dostê wan e. Ji wan re ezabekî biêş û jan heye.

**64.** Me ev Kitêb ji te re nazil kir, da ku tiştê tê de ketine îxtîlafê tu ji wan re beyan bikî û ji komeke ku îman anîne re jî bibe hîdayet û rahmet.

وَاللّٰهُ اَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَاَحْيَا بِهِ الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَاۜ اِنَّ فِي ذٰلِكَ
لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَسْمَعُونَ ﴿٦٥﴾ وَاِنَّ لَكُمْ فِي الْاَنْعَامِ لَعِبْرَةًۜ نُسْقِيكُمْ
مِمَّا فِي بُطُونِهِ مِنْ بَيْنِ فَرْثٍ وَدَمٍ لَبَنًا خَالِصًا سَٓائِغًا لِلشَّارِبِينَ ﴿٦٦﴾
وَمِنْ ثَمَرَاتِ النَّخِيلِ وَالْاَعْنَابِ تَتَّخِذُونَ مِنْهُ سَكَرًا وَرِزْقًا
حَسَنًاۜ اِنَّ فِي ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ﴿٦٧﴾ وَاَوْحٰى رَبُّكَ اِلَى النَّحْلِ
اَنِ اتَّخِذِي مِنَ الْجِبَالِ بُيُوتًا وَمِنَ الشَّجَرِ وَمِمَّا يَعْرِشُونَۙ ﴿٦٨﴾
ثُمَّ كُلِي مِنْ كُلِّ الثَّمَرَاتِ فَاسْلُكِي سُبُلَ رَبِّكِ ذُلُلًاۜ يَخْرُجُ
مِنْ بُطُونِهَا شَرَابٌ مُخْتَلِفٌ اَلْوَانُهُ فِيهِ شِفَٓاءٌ لِلنَّاسِۜ اِنَّ فِي ذٰلِكَ
لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ ﴿٦٩﴾ وَاللّٰهُ خَلَقَكُمْ ثُمَّ يَتَوَفّٰيكُمْ
وَمِنْكُمْ مَنْ يُرَدُّ اِلٰٓى اَرْذَلِ الْعُمُرِ لِكَيْ لَا يَعْلَمَ بَعْدَ عِلْمٍ شَيْـًٔاۜ
اِنَّ اللّٰهَ عَلِيمٌ قَدِيرٌ ﴿٧٠﴾ وَاللّٰهُ فَضَّلَ بَعْضَكُمْ عَلٰى بَعْضٍ فِي الرِّزْقِۚ
فَمَا الَّذِينَ فُضِّلُوا بِرَٓادّ۪ي رِزْقِهِمْ عَلٰى مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُهُمْ فَهُمْ
فِيهِ سَوَٓاءٌۜ اَفَبِنِعْمَةِ اللّٰهِ يَجْحَدُونَ ﴿٧١﴾ وَاللّٰهُ جَعَلَ لَكُمْ مِنْ اَنْفُسِكُمْ
اَزْوَاجًا وَجَعَلَ لَكُمْ مِنْ اَزْوَاجِكُمْ بَنِينَ وَحَفَدَةً وَرَزَقَكُمْ
مِنَ الطَّيِّبَاتِۜ اَفَبِالْبَاطِلِ يُؤْمِنُونَ وَبِنِعْمَتِ اللّٰهِ هُمْ يَكْفُرُونَۙ ﴿٧٢﴾

**65.** Allah ji esman av dadixîne û piştî mirina wê erd pê vedijîne. Bêşik di vêya de ji bo qewmekî bihîstkar (ji bo fikirandin û şîretgirtinê) ayet hene.

**66.** Ji we re di heywanan de jî îbret hene. Em di navbera ferşa zikê wan û xwînê de bi we şîrekî darivî û zelal ku vexwarina wê hêsan e, didin vexwarin.

**67.** Hûn ji fêkîyên (darê) xurme û ji tirî şerab/mey derdixin û rizqekî xweşik bi dest dixin. Ji bo qewmekî aqilmend di vê de ayet hene. (Di demên pêş de Allah (ac) şerab heram kiriye. (Bnr. 5/Maîde, 90-91))

**68.** Rabbê te ji mêşa hingiv re wiha wehîy kir: “Di çiyan de û di daran de û di kewaran de ji xwe re malan çêke.”

**69.** “Paşê ji hemû cureyên fêkîyan bixwin û têkevin rêyên ku Rabbê te ji we re hêsan kiriye.” Ji zikê wan di rengên curbicur de şerbet/hingiv derdikeve. Di wê de ji însanan re şîfa heye. Bêguman di vê de ji bo qewmekî difikirin re ayet hene.

**70.** Allah we xuliqand û paşê dê we bimirîne. Hin kesên ji we ku berê zana bûn ji ber ku bikevin rewşeke qet tiştekî nizanin hetanî ûmrê xerab (ixtîyarîyê) bên vegerandin (wê bên jiyandin). Bêguman Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (yê ku hêza wî digihîje her tiştî û xwedî qudret) Qadir e.

**71.** Allah, di mijara rizqê de hinek ji we di ser hinekan re girtîye. Ew ên (bi dayîna rizqa fireh) di ser yên din re hatine girtin, ne ew in ku malê xwe bidin wan ên bindestê xwe da ku ew tevde di rizqê de bibin wekhev. (Her ku rewş ev e, bi şirîk çêkirinê) qey ew, nîmetên Allah înkar dikin?

(Qet tu mîr/efendî, ji bo ku bibin weke hevdu malên xwe bi koleyên xwe re parve nake. Ev heqîqeteke wisan e ku hemû muşrîk vêya îqrar dikin. Ligel vê yekê bawerî bi van tiştan jî dianîn ku; Allah (ac) raye daye wan pûtên ku li ser navê kesên salih hatine çikandin û di kaînatê de teserrûfê dikin û bi xeybê dizanin û digîjin hewarîya wan kesan ku ji rûhanîyeta wan daxwaza alîkarîyê dikin. Yanê ew muşrîkên ku koleyên xwe ji milkê xwe re wek hevbeş qebûl nedikirin, pêbawer bûn ku Allah (ac) kesên salih ji milk û rayeyên xwe re wek şirîk girtîye. Ewana îbadeta ji Allah (ac) re terk dikirin û ji wan pûtan re îbadet dikirin. Herwiha nîmetên Allah (ac) înkar dikirin. (Bnr. 30/Rûm, 28))

**72.** Allah ji bo we, ji nefsên we hevalan (jinan) xuliqand. Ji hevjînên we jî zarokan û nevîyan xuliqand. We bi tiştên xweşik da riziqandin. (Her ku rewş ev e) ma ew hêj jî bi batilê îmân tînin û nîmetên Allah înkar dikin?

وَيَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مَا لَا يَمْلِكُ لَهُمْ رِزْقًا مِنَ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ شَيْـًٔا وَلَا يَسْتَطٖيعُونَۚ ﴿٧٣﴾ فَلَا تَضْرِبُوا لِلّٰهِ
الْاَمْثَالَۜ اِنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ وَاَنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿٧٤﴾ ضَرَبَ اللّٰهُ مَثَلًا
عَبْدًا مَمْلُوكًا لَا يَقْدِرُ عَلٰى شَيْءٍ وَمَنْ رَزَقْنَاهُ مِنَّا رِزْقًا
حَسَنًا فَهُوَ يُنْفِقُ مِنْهُ سِرًّا وَجَهْرًاۜ هَلْ يَسْتَوُ۫نَۜ اَلْحَمْدُ لِلّٰهِۜ
بَلْ اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٧٥﴾ وَضَرَبَ اللّٰهُ مَثَلًا رَجُلَيْنِ
اَحَدُهُمَٓا اَبْكَمُ لَا يَقْدِرُ عَلٰى شَيْءٍ وَهُوَ كَلٌّ عَلٰى مَوْلٰيهُۙ
اَيْنَمَا يُوَجِّهْهُ لَا يَاْتِ بِخَيْرٍۜ هَلْ يَسْتَوٖي هُوَۙ وَمَنْ يَاْمُرُ
بِالْعَدْلِۙ وَهُوَ عَلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقٖيمٍ۟ ﴿٧٦﴾ وَلِلّٰهِ غَيْبُ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِۜ وَمَٓا اَمْرُ السَّاعَةِ اِلَّا كَلَمْحِ الْبَصَرِ اَوْ هُوَ اَقْرَبُۜ
اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدٖيرٌ ﴿٧٧﴾ وَاللّٰهُ اَخْرَجَكُمْ
مِنْ بُطُونِ اُمَّهَاتِكُمْ لَا تَعْلَمُونَ شَيْـًٔاۙ وَجَعَلَ لَكُمُ
السَّمْعَ وَالْاَبْصَارَ وَالْاَفْـِٔدَةَۙ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٧٨﴾
اَلَمْ يَرَوْا اِلَى الطَّيْرِ مُسَخَّرَاتٍ فٖي جَوِّ السَّمَٓاءِۜ مَا يُمْسِكُهُنَّ
اِلَّا اللّٰهُۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٧٩﴾

**73.** Ew (muşrîk) ji Allah pê ve ji tiştên ku li erd û esmanan qet nikarin rizqekî bidin û tu carî nikarin (vêya bikin) re îbadet dikin.

**74.** (Bi şibandina Allah bi hin heyînên din û bi şibandina hin heyînên din jî bi Allah) li ser Allah qet tu mînakan/mîsalan nedin. (Mîsala der barê Allah de bê dayîn enceq) Allah dizane, hûn nizanin.

(Ji ber ku qet tu tiştek nabe misl û menend û wekhev an jî nêzî Allah (ac), divê li ser mîsal dayîna hebûn û yekîtîya Allah (ac) de pir bi dîqat bê tevgerîn. Bêguman yê ku şan û ezamet û îzzet û celaleta xwe herî baş ew dizane, enceq Allah (ac) der heqê xwe de bikaribe mîsalan bide. Pêwiste ku însan jî bi van mîsalan bes bikin. Kesên muşrîk, Allah (ac) dişibînin hin heyînan û ji ve qiyasê jî hin encaman bi dest dixistin. Mesela ew ji xwe re dibêjin çawa ku melîkek/rayedarek nikaribe bê şirîk û alîkar û wezîrek birêvebirina xwe bimeşîne weke vê divê ku ji bo Allah jî şirîk û alîkarên ku di kaînatê de teserrûfê bikin hebin. Bi mîsala çawa ku bê navber mirovek nikare xwe bigijîne Hikumdarek an giregirek weke vê, digotin pêwiste ku hin wesîle hebin da ku mirov bigihînin Allah: “Evana li îndallah/li cem Allah ji bo me şefaetvan in.” (10/Yûnus, 18) û “wesîleyên ku me digihînin Allah in.” (39/Zûmer, 3).”)

**75.** (Ji bo ku hûn ferqa di navbera Allah û wan pûtên ku we bi îlâhtî girtîye fêmbikin) Allah, mîsala koleyekî dide ku ew bixwe milkê yekî din e û hêza wî li ser tiştekî tune û mîsala wî mirovê (azad) dide ku me rizqekî xweşik dayê û ew jî bi dizî û eşkere ji wê rizqê xerc dike. (Ev herdû) qet dibin weke hevdu? Hamd ji Allah re ye. Lê belê pirên wan nizanin.

(Serokekî wek pût tê girtin an jî pûtêkî nabîne û nabihîze û napeyive û hêza wî li ser tiştekî tune; qet dibe wekî wî Allahê qadirê mutleq ku Basîr û Semî û Mutekellîm e? Pirên însanan ji ber ku vê ferqê qenc fêm nekirine pûtan û meqberan û serokên dînî an sîyasî ji Allah re şirîk çêdikin û hetanî îbadetên divê ku ji Allah re bikin ji van heyînan re dikin.)

**76.** Allah ev herdû zilam jî wek mîsal dide. Yek ji wan lal e û hêza wî li ser tiştekî tune û ew li ser xwedîyê xwe bar e. Xwedîyê wî, ew bi ku ve bişîne tu qencîyekî nayne (wê îşê edim dike/diherimîne). Ma ev û ew ê ku ew bixwe li ser rêyekî rast be û bi edalet emir dike dibin weke hev?

(Ew heyînên ji xeynî Allah (ac) îbadet li wan tên kirin, nikarin rêya rast nîşanî peyrevên xwe bidin û wan îrşad bikin. Lê belê Allah bixwe emrê edaletê li evdên xwe dike û wan li ser sîratu’lmustaqîm de digihîne hîdayetê.)

**77.** (Agahîya) xeyba erd û esmanan aîdê Allah e. Rewşa roja qiyametê jî wekî (dema) çav girtinekî yê û belkî jê jî nêzîktir (lezgîntir) e. Bêguman Allah, qadirê li ser her tiştî ye.

**78.** Allah, hûn ji zikê dayîkên we deranîn ku we qet bi tu tiştekî nizanîbû. Ji bo ku hûn şikûr bikin (Allah) guhan û çavan û dilan daye we.

**79.** Erê, ma ew wan teyran nabînin ku di valahîya esmanan de sitû li wan hatîye tewandin? Ji Allah pê ve tu kes (di wê valahîyê de bi wê awayê) nikare wan bigire.

وَاللّٰهُ جَعَلَ لَكُمْ مِنْ بُيُوتِكُمْ سَكَنًا وَجَعَلَ لَكُمْ
مِنْ جُلُودِ الْاَنْعَامِ بُيُوتًا تَسْتَخِفُّونَهَا يَوْمَ ظَعْنِكُمْ وَيَوْمَ
اِقَامَتِكُمْۙ وَمِنْ اَصْوَافِهَا وَاَوْبَارِهَا وَاَشْعَارِهَٓا اَثَاثًا وَمَتَاعًا
اِلٰى حِينٍ ﴿٨٠﴾ وَاللّٰهُ جَعَلَ لَكُمْ مِمَّا خَلَقَ ظِلَالًا وَجَعَلَ لَكُمْ
مِنَ الْجِبَالِ اَكْنَانًا وَجَعَلَ لَكُمْ سَرَابِيلَ تَقِيكُمُ
الْحَرَّ وَسَرَابِيلَ تَقِيكُمْ بَأْسَكُمْۜ كَذٰلِكَ يُتِمُّ نِعْمَتَهُ
عَلَيْكُمْ لَعَلَّكُمْ تُسْلِمُونَ ﴿٨١﴾ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَاِنَّمَا عَلَيْكَ
الْبَلَاغُ الْمُبِينُ ﴿٨٢﴾ يَعْرِفُونَ نِعْمَتَ اللّٰهِ ثُمَّ يُنْكِرُونَهَا
وَاَكْثَرُهُمُ الْكَافِرُونَ ﴿٨٣﴾ وَيَوْمَ نَبْعَثُ مِنْ كُلِّ اُمَّةٍ
شَهِيدًا ثُمَّ لَا يُؤْذَنُ لِلَّذِينَ كَفَرُوا وَلَا هُمْ يُسْتَعْتَبُونَ ﴿٨٤﴾
وَاِذَا رَاَ الَّذِينَ ظَلَمُوا الْعَذَابَ فَلَا يُخَفَّفُ عَنْهُمْ
وَلَا هُمْ يُنْظَرُونَ ﴿٨٥﴾ وَاِذَا رَاَ الَّذِينَ اَشْرَكُوا شُرَكَٓاءَهُمْ
قَالُوا رَبَّنَا هٰٓؤُلَٓاءِ شُرَكَٓاؤُنَا الَّذِينَ كُنَّا نَدْعُوا
مِنْ دُونِكَۚ فَاَلْقَوْا اِلَيْهِمُ الْقَوْلَ اِنَّكُمْ لَكَاذِبُونَۚ ﴿٨٦﴾ وَاَلْقَوْا
اِلَى اللّٰهِ يَوْمَئِذٍ السَّلَمَ وَضَلَّ عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ﴿٨٧﴾

**80.** Allah malên we/xanîyên we (wek ciheke rûniştinê ya bi ewlehî û bi parastina malbata xwe ji bo we) kir mesken. Ji çermên heywanan jî ji bo we hem di roja koçê de û hem jî di demên cihwarbûnê de xanîyên sivik (konan) ku hilgirtina wan hêsan çêkirin. Ji hirî û lîv û keja wan (heywanan) hetanî demeke diyarkirî eşya (yên lixwekirinê û raxistinê û xemlandinê) û metaên (ku hûn di danûstendinê de biemilînin) ava kiriye.

**81.** Allah, ji tiştên xuliqandîye ji bo we sîyan çêkiriye. Di çiyan de jî (ji bo parastin û sitarîya we) sîper û sitargeh xuliqand. Libasên ku we ji germê biparêze û cilên (bi zirx) ku we di şer de bisitirîne daye we. Bi vê awayê (Allah, ji bo bi tewhîd û îtaetê) hûn teslîm bibin ha wiha nîmetên xwe li ser we temam kir.

**82.** Eger ew rû vegerînin êdî tiştê li te dikeve tenê teblîxeke eşkere ye.

**83.** Ew îtiraf dikin ku hemû nîmet ji Allah in. Piştre jî (bi Bawerîya ku van nîmetan bi şefaeta qencan û bi navberîya wan bi dest xistine an jî nîmetan ji bîr dikin lê sebeban wek îlâh digirin) înkar dikin. Pirên wan kafir in.

**84.** Roja ku ji her ummetê re (ji bo li ser wan govanîyê/şahidîyê bike) em şahidekî derînin êdî ji kafiran re destûr tune û wê (daxwazîya wan ya vegera li heyata dinyayê û kirina amêlen qenc de) pejirandinê/qebûlkirinê jî nebînin.

**85.** Dema ew ên zalim ezab dibînin, êdî ezab li wan nayê sivikkirin û rûmetê jî nabînin/ezabê wan nayê paşdeavêtin.

**86.** Kesên muşrîk dema şirîkên xwe dibînin, dibêjin: “Rabbê me! Ew ên ku me ji xeynî te (ji te re şirîk çêdikirin û) wan dihebandin ha ev in.” Ew (şirîk) jî axaftina wan li wan vedigerînin û dibêjin: “Bi rastî hûn derewker in.”

**87.** Ew roj, teslîmî Allah bûne. Ew bêbextîyên (li ser navê dîn îcad kirine) ji wan dûrketine çûne.

اَلَّذٖينَ كَفَرُوا وَصَدُّوا عَنْ سَبٖيلِ اللّٰهِ زِدْنَاهُمْ عَذَابًا
فَوْقَ الْعَذَابِ بِمَا كَانُوا يُفْسِدُونَ ﴿٨٨﴾ وَيَوْمَ نَبْعَثُ
فٖى كُلِّ اُمَّةٍ شَهٖيدًا عَلَيْهِمْ مِنْ اَنْفُسِهِمْ وَجِئْنَا بِكَ شَهٖيدًا
عَلٰى هٰٓؤُلَٓاءِۜ وَنَزَّلْنَا عَلَيْكَ الْكِتَابَ تِبْيَانًا لِكُلِّ شَيْءٍ
وَهُدًى وَرَحْمَةً وَبُشْرٰى لِلْمُسْلِمٖينَ ﴿٨٩﴾ اِنَّ اللّٰهَ يَأْمُرُ بِالْعَدْلِ
وَالْاِحْسَانِ وَاٖيتَٓائِ ذِى الْقُرْبٰى وَيَنْهٰى عَنِ الْفَحْشَٓاءِ
وَالْمُنْكَرِ وَالْبَغْيِ يَعِظُكُمْ لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ ﴿٩٠﴾
وَاَوْفُوا بِعَهْدِ اللّٰهِ اِذَا عَاهَدْتُمْ وَلَا تَنْقُضُوا الْاَيْمَانَ بَعْدَ
تَوْكٖيدِهَا وَقَدْ جَعَلْتُمُ اللّٰهَ عَلَيْكُمْ كَفٖيلًاۜ اِنَّ اللّٰهَ
يَعْلَمُ مَا تَفْعَلُونَ ﴿٩١﴾ وَلَا تَكُونُوا كَالَّتٖى نَقَضَتْ غَزْلَهَا
مِنْ بَعْدِ قُوَّةٍ اَنْكَاثًاۜ تَتَّخِذُونَ اَيْمَانَكُمْ دَخَلًا بَيْنَكُمْ
اَنْ تَكُونَ اُمَّةٌ هِيَ اَرْبٰى مِنْ اُمَّةٍۜ اِنَّمَا يَبْلُوكُمُ اللّٰهُ بِهٖۜ
وَلَيُبَيِّنَنَّ لَكُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ مَا كُنْتُمْ فٖيهِ تَخْتَلِفُونَ ﴿٩٢﴾
وَلَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ لَجَعَلَكُمْ اُمَّةً وَاحِدَةً وَلٰكِنْ يُضِلُّ
مَنْ يَشَٓاءُ وَيَهْدٖى مَنْ يَشَٓاءُۜ وَلَتُسْـَٔلُنَّ عَمَّا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٩٣﴾

**88.** Ew ên kafir in û (însanan) ji rêya Allah men dikin jî; ji ber fesadîya wan ve em ê li ser ezaba wan, ezabekî din bidin wan.

**89.** Em ê wê rojê ji nava wan ji her ummetekî re şahidekî bivejînin. Wê rojê em te jî li ser wan (li ser ûmmeta te wek) şahid tînin. Me ji te re wek hîdayet û rahmet û mizgînî ev Kitêb nazil kir da ku tu di nava muslîman de her tiştî beyan bikî û rêya rast nîşan bidî.

**90.** Bêguman Allah edaletê û qencîyê û alîkarîya ji bo eqrebeyan emir dike. Ji fuhşîyatê û ji munkerê û ji zêdegavîyê (ji binpêkirina heqên mirovên din) men dike. Ji bo ku hûn bi bîr bînin û bifikirin şîretan li we dike.

**91.** Dema we soz da Allah, wê soza xwe bêkêmasî pêk bînin. Piştî zeximandina wan, sondên xwe xera nekin. (Lewre ji ber wê karê bi sonda bi navê Allah) we Allah li ser xwe kiribû kefil. Bêşik Allah bi ya ku hûn dikin dizane.



**92.** Hûn jî (soza xwe ya ku we li ser navê Allah zeximandibû bi xerakirina wê) nebin weke wê jina ku piştî hirîya xwe zexm hunandîye/rêsandîye û paşê jî veçirendîye (û anîye rewşa berê). Ji bona ku komek (bi mal û hejmara xwe) ji koma din zehftir e, di nava xwe de sondên xwe nekin navgîna hîle û fesadîyê. Allah (bi wan soz û sondên we) enceq we îmtîhan dike. Dê Allah roja qiyametê tiştên ku hûn der heqê wî de ketine îxtîlafê, helbet wê ji we re eşkere bike.

(Mucahîd (rh) der heqê vê ayetê de wiha dibêje: "Di dewra cahilîyê de qewmek peyman datanî û yekîtî/tifaq pêk dianîn. Lê dema ku qewmekî dewlemend û bi hêz didîtin peymana xwe yê berê xera dikirin û bi wê qewma bi hêz û dewlemend re peymaneke nû datanîn." (Ibnî Ebî Hatim, 12646; Taberi))

**93.** Eger Allah bixwesta wê hûn hemû bikira yek ummetek tenê (ku li ser tewhîdê evdîtîya Allah dikin). Lê Allah kîjanî daxwaz bike dixerifîne û kîjanî jî bixwaze hîdayet dike. Bêşik hûn ê ji kar û kirinên xwe hisab bidin/bên pirsyarkirin.

وَلَا تَتَّخِذُٓوا اَيْمَانَكُمْ دَخَلًا بَيْنَكُمْ فَتَزِلَّ قَدَمٌ
بَعْدَ ثُبُوتِهَا وَتَذُوقُوا السُّٓوءَ بِمَا صَدَدْتُمْ عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِۚ
وَلَكُمْ عَذَابٌ عَظِيمٌ ﴿٩٤﴾ وَلَا تَشْتَرُوا بِعَهْدِ اللّٰهِ ثَمَنًا قَليلًاۜ
اِنَّمَا عِنْدَ اللّٰهِ هُوَ خَيْرٌ لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٩٥﴾
مَا عِنْدَكُمْ يَنْفَدُ وَمَا عِنْدَ اللّٰهِ بَاقٍۜ وَلَنَجْزِيَنَّ الَّذِينَ
صَبَرُٓوا اَجْرَهُمْ بِاَحْسَنِ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٩٦﴾ مَنْ عَمِلَ
صَالِحًا مِنْ ذَكَرٍ اَوْ اُنْثٰى وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَلَنُحْيِيَنَّهُ
حَيٰوةً طَيِّبَةًۚ وَلَنَجْزِيَنَّهُمْ اَجْرَهُمْ بِاَحْسَنِ مَا كَانُوا
يَعْمَلُونَ ﴿٩٧﴾ فَاِذَا قَرَاْتَ الْقُرْاٰنَ فَاسْتَعِذْ بِاللّٰهِ مِنَ الشَّيْطَانِ
الرَّجِيمِ ﴿٩٨﴾ اِنَّهُ لَيْسَ لَهُ سُلْطَانٌ عَلَى الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَلٰى
رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ ﴿٩٩﴾ اِنَّمَا سُلْطَانُهُ عَلَى الَّذِينَ يَتَوَلَّوْنَهُ
وَالَّذِينَ هُمْ بِهِ مُشْرِكُونَ۟ ﴿١٠٠﴾ وَاِذَا بَدَّلْنَٓا اٰيَةً مَكَانَ اٰيَةٍۙ
وَاللّٰهُ اَعْلَمُ بِمَا يُنَزِّلُ قَالُٓوا اِنَّمَٓا اَنْتَ مُفْتَرٍۜ بَلْ اَكْثَرُهُمْ
لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٠١﴾ قُلْ نَزَّلَهُ رُوحُ الْقُدُسِ مِنْ رَبِّكَ بِالْحَقِّ
لِيُثَبِّتَ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَهُدًى وَبُشْرٰى لِلْمُسْلِمِينَ ﴿١٠٢﴾

**94.** Di navbera xwe de sondên xwe nekin sedema hîle û fesadîyê. Nexwe piştî ku pê/ling (li ser îstîqametê) pêlî erdê kiribe wê bişemite û ji bo ku we ji rêya Allah vegerandîye hûn ê xerabîyê (ezabekî biêş û jan) bitamînin. Wê ji we re (li axîretê) bibe ezabekî mezin.

**95.** Ehda Allah bi bihayekî erzan nefiroşin. Eger hûn bizanibin ew (mikafata li hêvîya we) ya li cem Allah, ji we re bixêrtir e.

**96.** Yên li cem we (metaên dinyayê) diqede. Lê ew ê li cem Allah baqî ye. Bêguman em ê xelata sebirvanan bi kar û kirinên wan ên herî xweşik bidin wan.

**97.** Çi mêr be û çi jin be, her kî wek mumîn amelekî qenc bike bêguman em ê heyateke xweşik pê bidin jiyandin û em ê xelata wan bi kar û kirinên herî rind bidin wan.

**98.** Dema ku tu Qur'an bixwînî xwe ji şeytanê qewirandî/ricimandî bispêre Allah.

**99.** Bi rastî ew kesên îmân anîne û tewekkulê Rabbê xwe kirine qet tu hakimîyeta wî (şeytan) li ser wan tune.

**100.** Hakimîyeta wî enceq li ser wan kesên (îtaeta wî dikin û) wî ji xwe re dikin dost û li ser wan ên (bi kirina emrê wî ya kufrê û amelên şirkê û) wî (ji Allah re) şirîk çêdikin re ye.

**101.** Dema em ayetekê di şûna ayetekê din de diguherînin -helbet Allah çêtir dizane ku çi nazil kiriye- wiha dibêjin: "Tu bi tenê buxtanker/îftiraker î!" (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, pirên wan nezan in.

**102.** Bibêje: "(Ev ne Kitêbeke lihevanînî ye. Berevajî,) ji bo ku sebatê bide (pîyên) mumînan û ji muslîman re bibe hîdayet û mizgînî Rûhu'l Qudus (Cibrîl) wê (Qur'anê) ji bal Rabbê te daxistîye."
(Ji bo meqseda nazilkirina Kitêbê bnr. 4/Nîsa, 105.)

وَلَقَدْ نَعْلَمُ اَنَّهُمْ يَقُولُونَ اِنَّمَا يُعَلِّمُهُ بَشَرٌ لِسَانُ
الَّذٖى يُلْحِدُونَ اِلَيْهِ اَعْجَمِىٌّ وَهٰذَا لِسَانٌ عَرَبِىٌّ
مُبٖينٌ ﴿١٠٣﴾ اِنَّ الَّذٖينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ
لَا يَهْدٖيهِمُ اللّٰهُ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَلٖيمٌ ﴿١٠٤﴾ اِنَّمَا يَفْتَرِى
الْكَذِبَ الَّذٖينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَاُولٰٓئِكَ
هُمُ الْكَاذِبُونَ ﴿١٠٥﴾ مَنْ كَفَرَ بِاللّٰهِ مِنْ بَعْدِ
اٖيمَانِهٖٓ اِلَّا مَنْ اُكْرِهَ وَقَلْبُهُ مُطْمَئِنٌّ بِالْاٖيمَانِ
وَلٰكِنْ مَنْ شَرَحَ بِالْكُفْرِ صَدْرًا فَعَلَيْهِمْ غَضَبٌ
مِنَ اللّٰهِ وَلَهُمْ عَذَابٌ عَظٖيمٌ ﴿١٠٦﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمُ اسْتَحَبُّوا
الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا عَلَى الْاٰخِرَةِ وَاَنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدِى الْقَوْمَ
الْكَافِرٖينَ ﴿١٠٧﴾ اُولٰٓئِكَ الَّذٖينَ طَبَعَ اللّٰهُ عَلٰى قُلُوبِهِمْ
وَسَمْعِهِمْ وَاَبْصَارِهِمْ وَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْغَافِلُونَ ﴿١٠٨﴾ لَا جَرَمَ
اَنَّهُمْ فِى الْاٰخِرَةِ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿١٠٩﴾ ثُمَّ اِنَّ رَبَّكَ
لِلَّذٖينَ هَاجَرُوا مِنْ بَعْدِ مَا فُتِنُوا ثُمَّ جَاهَدُوا
وَصَبَرُٓوا اِنَّ رَبَّكَ مِنْ بَعْدِهَا لَغَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿١١٠﴾

**103.** Sond be em dizanin ku ew dibêjin: “Enceq beşerek/mirovek hînî wî dike.” Zimanê wî kesê ku vê îdîayê (hînkirinê nisbetê wî dikin) ecemî/biyanî ye. Lê zimanê vê (Kitêbê) Erebîyeke vikîvekirî ye.

**104.** Allah, ew kesên îmân bi ayetên wî neanîne nagihîne hîdayetê. Û ji bo wan ezabekî biêş û jan heye.

**105.** Enceq ew ên bi ayetên Allah îmân naynin derew lihev tînin û bêbextîyan dikin. Ha ev ên hanê derewker bixwe ne.

**106.** Ew ên qelbê wan bi îmanê mutmeîn in (lê bi bal kufrê ve) zor li wan hatîye kirin ne tê de, piştî îmanê her kî bibe kafir (bi daxwaza xwe bi bal kufrê ve bixerife) û dilê xwe ji kufrê re veke, xezeba Allah li ser wan e û ji bo wan ezabekî mezin heye.

(Şirk û kufr, nexweşînên îtîqadî ne ku amelên mirov bi van betal dibin û eger ji şirkê tobe neyê kirin berê wî kesî bêdawî dide ber bi cehennemê ve. Mirov eger ji van helwestan an jî Bawerîyan yekî jî pêk bîne bi navê vê fîêlê, yanê bi navê “Kafir” an “Muşrîk” tê binavkirin ku hin ji wan jî ev in: Ji xeynî Allah dûa kirina ji hin kesên din re û ji xeynî Allah rayeya qanûnçêkerîyê bidin hin kes an sazîyên din û weke ku ji Allah hez dikin an ditirsin ji hin tiştên din hez bikin an bitirsin ku ev ên hanê dibin sebebê şirkê an jî weke înkara ayetekî û tinazkarîya dîn û seb/çêr kirina bi muqaddesatê ku ev jî dibin sebebê kufrê. Mînaka vê weke wî kesê ku guneh dike û bi navê “gunehkar” tê navandin e.

Qur'an û Sunneta sehîh, van her du rewşan ji qaîdeyên umûmî îstisna girtîye:

a. Îkrah, yanê ne bi daxwaza xwe bi zor lê kirina kesên din pêkanîna fiêlên kufr û şirkê.

b. Weke bi şelipa ziman û xew û ji dil çûnê di lehzeyên bêhişîyê de, ne bi daxwaza xwe, yanê bê qestî gotina peyvekî ku dibe sebebê kufr û şirkê.

Ji xeynî van her du ûzran, hin ûzrên din hene ku civakên ji wehîyê dûr ketine dipejirînin lê Qur'an bi awayekî qethî red û îptal dike. Wek mîsal, tabî bûna serokên sîyasî (2/Baqara, 165-167) û tewil (7/A’raf, 30) û cahîltî (7/A’raf, 172) û teqlîd (7/A’raf, 173).)

**107.** (Sedema vê) ev e ku ew, jiyana dinyayê serdestê axîretê digirin û ji ber ku Allah koma kafiran nagihîne hîdayetê ye.

**108.** Ev ên hanê ew kes in ku Allah qelbên wan û guhên wan û çavên wan mohr kiriye. Evana, xafil bixwe ne.

**109.** Çare tune! Bêguman ew ên li axîretê xesirîne ew bixwe ne.

**110.** Paşê Rabbê te, alîkarîya ew ên piştî ku îşkence dîtine û hîcret kirine û paşê sebir kirine û cîhad kirine re (belê,) bêguman (ji ew ên wisan re) Rabbê te (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

يَوْمَ تَأْت۪ي كُلُّ نَفْسٍ تُجَادِلُ عَنْ نَفْسِهَا وَتُوَفّٰى كُلُّ
نَفْسٍ مَا عَمِلَتْ وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿١١١﴾ وَضَرَبَ اللّٰهُ مَثَلًا قَرْيَةً
كَانَتْ اٰمِنَةً مُطْمَئِنَّةً يَأْت۪يهَا رِزْقُهَا رَغَدًا مِنْ كُلِّ مَكَانٍ
فَكَفَرَتْ بِاَنْعُمِ اللّٰهِ فَاَذَاقَهَا اللّٰهُ لِبَاسَ الْجُوعِ وَالْخَوْفِ
بِمَا كَانُوا يَصْنَعُونَ ﴿١١٢﴾ وَلَقَدْ جَٓاءَهُمْ رَسُولٌ مِنْهُمْ
فَكَذَّبُوهُ فَاَخَذَهُمُ الْعَذَابُ وَهُمْ ظَالِمُونَ ﴿١١٣﴾ فَكُلُوا
مِمَّا رَزَقَكُمُ اللّٰهُ حَلَالًا طَيِّبًاۖ وَاشْكُرُوا نِعْمَتَ اللّٰهِ
اِنْ كُنْتُمْ اِيَّاهُ تَعْبُدُونَ ﴿١١٤﴾ اِنَّمَا حَرَّمَ عَلَيْكُمُ الْمَيْتَةَ
وَالدَّمَ وَلَحْمَ الْخِنْز۪يرِ وَمَٓا اُهِلَّ لِغَيْرِ اللّٰهِ بِه۪ۚ فَمَنِ اضْطُرَّ
غَيْرَ بَاغٍ وَلَا عَادٍ فَاِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿١١٥﴾ وَلَا تَقُولُوا
لِمَا تَصِفُ اَلْسِنَتُكُمُ الْكَذِبَ هٰذَا حَلَالٌ وَهٰذَا حَرَامٌ
لِتَفْتَرُوا عَلَى اللّٰهِ الْكَذِبَۜ اِنَّ الَّذ۪ينَ يَفْتَرُونَ عَلَى اللّٰهِ
الْكَذِبَ لَا يُفْلِحُونَۜ ﴿١١٦﴾ مَتَاعٌ قَل۪يلٌۖ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿١١٧﴾
وَعَلَى الَّذ۪ينَ هَادُوا حَرَّمْنَا مَا قَصَصْنَا عَلَيْكَ
مِنْ قَبْلُۚ وَمَا ظَلَمْنَاهُمْ وَلٰكِنْ كَانُٓوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ ﴿١١٨﴾

**111.** Ew roj her nefs tê û ji bo xwe (xelas bike) dixebite. Û keda her kesî bi temamî/bê kêmasî tê dayîn. Û neheqî jî li wan nayê kirin.

**112.** Allah mîsala warekî dide. Ew di nava ewlehî û aramîyê de (dijîn) û rizqê wan ji her alîyê ve bi firehî dihat. Lê ji nîmetên Allah re nankorî kirin. Allah jî li hember (nankorîya wan) kirasê birçîtî û tirsê (li wan kir û heta hestîyê wan) ew pê tamandin/çêjandin.

**113.** Sond be, ji nava wan ji wan re pêxemberek hat. (Lê belê) ew derewandin. Ew hêj di wê rewşê de bûn ku zilma xwe didomandin ezab bi wan ve girt.

**114.** Ji tiştên ku Allah we pê riziqandîye wek helal û paqij bixwin. Eger hûn bi tenê ji Allah re îbadet dikin, ji nîmetên wî re şikur bikin.

**115.** Allah ji bo we bi tenê meyte û xwîn û beraz û heywanên ku ji xeynî Allah bi navê hin heyînên din hatine serjêkirin heram kiriye. Her kî di zorê de bimîne bi şertê ku ji hedê xwe nebore û zêdayî neke (di xwarina van de ji bo wî guneh tune). Bêguman Allah (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**116.** Ji ber derewên ku hûn bi zimanê xwe diwesfînin nebêjin: “Ev helal e, ev heram e.” (Ya na) hûn ê bibin ji wan ên ku derewan lihev tînin û bêbextîyan li Allah dikin. Bêguman xelasî/felah ji wan kesên ku bi lihevanîna derewan bêbextîyan li Allah dikin re tune.

**117.** (Ew tiştê ku bi bêbextîya li Allah kirine û der heqê dîn de bi axaftina nezanî bi dest xistine) metaekî pir hindik e! Ji bo wan ezabekî biêş û jan heye.

**118.** Ew tiştên ku me berê ji te re behs kir, me ji cihûyan re heram kiribûn. Me zilim li wan nekiriye. Lê belê wan zilim li xwe dikir.
(bnr. 6/En’am, 146)

ثُمَّ اِنَّ رَبَّكَ لِلَّذ۪ينَ عَمِلُوا السُّٓوءَ بِجَهَالَةٍ ثُمَّ تَابُوا مِنْ بَعْدِ
ذٰلِكَ وَاَصْلَحُٓواۙ اِنَّ رَبَّكَ مِنْ بَعْدِهَا لَغَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿١١٩﴾
اِنَّ اِبْرٰه۪يمَ كَانَ اُمَّةً قَانِتًا لِلّٰهِ حَن۪يفًاۜ وَلَمْ يَكُ
مِنَ الْمُشْرِك۪ينَۙ ﴿١٢٠﴾ شَاكِرًا لِاَنْعُمِه۪ۜ اِجْتَبٰيهُ وَهَدٰيهُ اِلٰى صِرَاطٍ
مُسْتَق۪يمٍ ﴿١٢١﴾ وَاٰتَيْنَاهُ فِي الدُّنْيَا حَسَنَةًۜ وَاِنَّهُ فِي الْاٰخِرَةِ لَمِنَ
الصَّالِح۪ينَۜ ﴿١٢٢﴾ ثُمَّ اَوْحَيْنَٓا اِلَيْكَ اَنِ اتَّبِعْ مِلَّةَ اِبْرٰه۪يمَ حَن۪يفًاۜ
وَمَا كَانَ مِنَ الْمُشْرِك۪ينَ ﴿١٢٣﴾ اِنَّمَا جُعِلَ السَّبْتُ
عَلَى الَّذ۪ينَ اخْتَلَفُوا ف۪يهِۜ وَاِنَّ رَبَّكَ لَيَحْكُمُ بَيْنَهُمْ
يَوْمَ الْقِيٰمَةِ ف۪يمَا كَانُوا ف۪يهِ يَخْتَلِفُونَ ﴿١٢٤﴾ اُدْعُ اِلٰى سَب۪يلِ
رَبِّكَ بِالْحِكْمَةِ وَالْمَوْعِظَةِ الْحَسَنَةِ وَجَادِلْهُمْ بِالَّت۪ي هِيَ
اَحْسَنُۜ اِنَّ رَبَّكَ هُوَ اَعْلَمُ بِمَنْ ضَلَّ عَنْ سَب۪يلِه۪ وَهُوَ اَعْلَمُ
بِالْمُهْتَد۪ينَ ﴿١٢٥﴾ وَاِنْ عَاقَبْتُمْ فَعَاقِبُوا بِمِثْلِ مَا عُوقِبْتُمْ بِه۪ۜ
وَلَئِنْ صَبَرْتُمْ لَهُوَ خَيْرٌ لِلصَّابِر۪ينَ ﴿١٢٦﴾ وَاصْبِرْ وَمَا صَبْرُكَ
اِلَّا بِاللّٰهِ وَلَا تَحْزَنْ عَلَيْهِمْ وَلَا تَكُ ف۪ي ضَيْقٍ مِمَّا يَمْكُرُونَ ﴿١٢٧﴾
اِنَّ اللّٰهَ مَعَ الَّذ۪ينَ اتَّقَوْا وَالَّذ۪ينَ هُمْ مُحْسِنُونَ ﴿١٢٨﴾

**119.** Paşê bi rastî Rabbê te ji bo yên ku bi nezanî guneh kirine û piştre ji vêya tobe dikin û (rewşa) xwe rast dikin, ji bo wan (kesên wisan re) Rabbê te (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**120.** Bêguman Îbrahîm bi serê xwe ummetek bû. Ji dil îtaetî Allah dikir û henîf (ew ê şirkê terk dike û bi îxlâs berê xwe dide Allah) bû. Ne ji muşrîkan bû/nebû ji muşrîkan.

**121.** Ji nîmetên wî (Allah) re şikur dikir. (Allah) ew hilbijart û wî gihande rêya rast.

**122.** Me li dinyayê xweşî dayê. Bêşik ew, li axîretê jî ji salihan e.

**123.** Paşê me wehîy li te kir û got: "Tu wek henîf tabiê mîlletê Îbrahîm bibe!" Ew ne ji muşrîkan bû.

(Ji bo Milletê Îbrahîm bnr. 60/Mumtehîne, 4.)

**124.** (Qedexeya) roja şemîyê/roja sebtê, ji ew ên li ser ketibûn îxtîlafê re hate ferzkirin. Bêşik wê Rabbê te roja qiyametê di navbera wan de li ser tiştên ku îxtîlaf kirine wê hukmê xwe bide.

**125.** Tu însanan bi hikmet û bi şîreta xweş dawet/gazî bike! Bi wan re bi awayekî xweşik têbikoşe. Bêguman Rabbê te bi ew ên ji rêya wî vegerîyane û bi ew ên li ser rêya rast in jî hê çêtir dizane.

(Ji bo taybetîyên daweta îslamê bnr. 12/Yûsuf, 108.)

**126.** Eger hûn ceza bidin bi qasî ya ku li we hatî kirin ceza bidin. Lê eger hûn sebir bikin ew ji sebirvanan re çêtir e.

(Bnr. 4/Nîsa, 148)

**127.** Sebir bike! Sebra te enceq bi alîkarîya Allah e. Li ber wan nekeve û ji ber kemînên ku danîne jî dilteng nebe.

(Ji bo helwesta rabbanî ya li dijî ezîyetên muşrîkan bnr. 20/Tâ-Hâ,130.)

**128.** Bêşik Allah, bi Mutteqîyan re û bi muhsînan/qencîkaran (ew ên ku evdîtîya xwe herî xweşik teqdîm dikin) re ye.




## 17. SÛREYA ÎSRA

*(Sûreya Îsra, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sed û yazdeh (111) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya hivdehem e. Di ayeta yekemîn de behsa bûyera Mîracê tê kirin. Allah (ac), ji bo ku hinek ayetên xwe nîşanî wî bide pêxemberê xwe şevekî ji Mescîdu'l Heram bi rêwîtîya şevê birîye Mescîdu'l Aqsa. Ev rêwîtîya şevê/Îsra di heman demê de bûye navê vê sûreyê. Mijarên serata yên vê sûreyê ev in: Serpêhatîyên di berdêla xerabîyên Benîîsraîl pêwist e ku ji bo Mekkîyan bibe îbret. Hemû kes ji karûkirinên xwe berpisîyar in. Hewcetîya xweşhelwestîya li dij dê û bav. Însan û cin bi tevahî bigihîjin hevdu jî wê nikaribin hewşêweyekî Qur'anê têxin holê. Rewşa kesên ayetên Allah (ac) înkar dikin û qiseya Mûsa (as) û qewmê wî.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim).*

**1.** Ji bo hinek ayetên xwe nîşanî wî bide ew (Allah) ê ku ji sifetên kêm munezzeh e/berî ye, evdê xwe di şevekê de ji Mescîdu'l Heram bire Mescîdu'l Aqsayê ku hawîrdora wê pîroz kiriye. Ew, (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**2.** Me Kitêb da Mûsa û me ew (Kitêb) ji bo Benî Îsraîl kir rehberê hîdayetê da ku ji min pê ve ji xwe re tu kesî (ji bo hûn karên xwe bispêrnê û lê tewekkul bikin) nekin wekîl.

**3.** Gelî zaroyên wan kesên ku me ew bi Nûh re (di keştîyê de) kişandibû! Bêguman ew (Nûh) evdekî pir şikurdar bû.

سُورَةُ الْإِسْرَاءِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ مِائَةٌ وَاِحْدٰى عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

سُبْحَانَ الَّذ۪ٓي اَسْرٰى بِعَبْدِه۪ لَيْلًا مِنَ الْمَسْجِدِ الْحَرَامِ
اِلَى الْمَسْجِدِ الْاَقْصَا الَّذ۪ي بَارَكْنَا حَوْلَهُ لِنُرِيَهُ مِنْ اٰيَاتِنَاۜ اِنَّهُ
هُوَ السَّم۪يعُ الْبَص۪يرُ ﴿١﴾ وَاٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ وَجَعَلْنَاهُ هُدًى
لِبَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَ اَلَّا تَتَّخِذُوا مِنْ دُون۪ي وَك۪يلًاۜ ﴿٢﴾ ذُرِّيَّةَ مَنْ حَمَلْنَا
مَعَ نُوحٍۜ اِنَّهُ كَانَ عَبْدًا شَكُورًا ﴿٣﴾ وَقَضَيْنَٓا اِلٰى بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَ
فِي الْكِتَابِ لَتُفْسِدُنَّ فِي الْاَرْضِ مَرَّتَيْنِ وَلَتَعْلُنَّ عُلُوًّا كَب۪يرًا ﴿٤﴾
فَاِذَا جَٓاءَ وَعْدُ اُو۫لٰيهُمَا بَعَثْنَا عَلَيْكُمْ عِبَادًا لَنَٓا اُو۫ل۪ي بَأْسٍ
شَد۪يدٍ فَجَاسُوا خِلَالَ الدِّيَارِۜ وَكَانَ وَعْدًا مَفْعُولًا ﴿٥﴾ ثُمَّ رَدَدْنَا
لَكُمُ الْكَرَّةَ عَلَيْهِمْ وَاَمْدَدْنَاكُمْ بِاَمْوَالٍ وَبَن۪ينَ وَجَعَلْنَاكُمْ
اَكْثَرَ نَف۪يرًا ﴿٦﴾ اِنْ اَحْسَنْتُمْ اَحْسَنْتُمْ لِاَنْفُسِكُمْ وَاِنْ اَسَأْتُمْ
فَلَهَاۜ فَاِذَا جَٓاءَ وَعْدُ الْاٰخِرَةِ لِيَسُٓؤُ۫ا وُجُوهَكُمْ وَلِيَدْخُلُوا
الْمَسْجِدَ كَمَا دَخَلُوهُ اَوَّلَ مَرَّةٍ وَلِيُتَبِّرُوا مَا عَلَوْا تَتْب۪يرًا ﴿٧﴾

**4.** Me di Kitêbê de ji bo Benî Îsraîl ev hikum jî dabû/diyar kiribû: Bêşik hûn ê li ser rûyê erdê du caran fesadîyê derxînin û hûn ê zêdegavîyeke bi qiretî bikin.

**5.** Dema ku ji wan her du weadan yek (wextê fesada yekem) hat, me di ser we de evdên xwe yên zordar şand. Hetanî dikevin qûl û qûlerên we û venêrîna/lêpirsîna we dikin. Ev, tiştekî wisan bû ku wê teqez pêk bihata.

**6.** Paşê li hemberî wan (evdên xwe) dîsa me serkeftin da we û bi serwet û zarokan piştgirêya we kir û hejmara we zêde kir.

**7.** Eger hûn (vê hêz û îmkanê li xêrê serf bikin û) qencîyê bikin hûn ji bo xwe qencî dikin. Eger hûn xerabîyê jî bikin hûn ê zerar bidin xwe. Dema weada dawîyê (ya duyem) were, (em ê evdên xwe yên xwedîhêz bi ser we de bişînin) ku bila rûyê we reş bikin û wekî berê bikevin mescîdê û çi bi destê wan bikeve serûbinî hev bikin.

عَسٰى رَبُّكُمْ اَنْ يَرْحَمَكُمْۚ وَاِنْ عُدْتُمْ عُدْنَاۢ وَجَعَلْنَا جَهَنَّمَ
لِلْكَافِرٖينَ حَصٖيرًا ﴿٨﴾ اِنَّ هٰذَا الْقُرْاٰنَ يَهْدٖى لِلَّتٖى هِىَ اَقْوَمُ وَيُبَشِّرُ
الْمُؤْمِنٖينَ الَّذٖينَ يَعْمَلُونَ الصَّالِحَاتِ اَنَّ لَهُمْ اَجْرًا كَبٖيرًاۙ ﴿٩﴾
وَاَنَّ الَّذٖينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ اَعْتَدْنَا لَهُمْ عَذَابًا اَلٖيمًاۙ ﴿١٠﴾
وَيَدْعُ الْاِنْسَانُ بِالشَّرِّ دُعَٓاءَهُ بِالْخَيْرِۜ وَكَانَ الْاِنْسَانُ عَجُولًا ﴿١١﴾
وَجَعَلْنَا الَّيْلَ وَالنَّهَارَ اٰيَتَيْنِ فَمَحَوْنَٓا اٰيَةَ الَّيْلِ وَجَعَلْنَٓا اٰيَةَ النَّهَارِ
مُبْصِرَةً لِتَبْتَغُوا فَضْلًا مِنْ رَبِّكُمْ وَلِتَعْلَمُوا عَدَدَ السِّنٖينَ
وَالْحِسَابَۜ وَكُلَّ شَيْءٍ فَصَّلْنَاهُ تَفْصٖيلًا ﴿١٢﴾ وَكُلَّ اِنْسَانٍ اَلْزَمْنَاهُ
طَٓائِرَهُ فٖى عُنُقِهٖۜ وَنُخْرِجُ لَهُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ كِتَابًا يَلْقٰيهُ مَنْشُورًا ﴿١٣﴾
اِقْرَاْ كِتَابَكَۜ كَفٰى بِنَفْسِكَ الْيَوْمَ عَلَيْكَ حَسٖيبًاۜ ﴿١٤﴾
مَنِ اهْتَدٰى فَاِنَّمَا يَهْتَدٖى لِنَفْسِهٖۚ وَمَنْ ضَلَّ فَاِنَّمَا يَضِلُّ عَلَيْهَاۜ
وَلَا تَزِرُ وَازِرَةٌ وِزْرَ اُخْرٰىۜ وَمَا كُنَّا مُعَذِّبٖينَ حَتّٰى نَبْعَثَ رَسُولًا ﴿١٥﴾
وَاِذَٓا اَرَدْنَٓا اَنْ نُهْلِكَ قَرْيَةً اَمَرْنَا مُتْرَفٖيهَا فَفَسَقُوا فٖيهَا فَحَقَّ
عَلَيْهَا الْقَوْلُ فَدَمَّرْنَاهَا تَدْمٖيرًا ﴿١٦﴾ وَكَمْ اَهْلَكْنَا مِنَ الْقُرُونِ
مِنْ بَعْدِ نُوحٍۜ وَكَفٰى بِرَبِّكَ بِذُنُوبِ عِبَادِهٖ خَبٖيرًا بَصٖيرًا ﴿١٧﴾

**8.** Hêvî heye ku Rabbê we li we rehmê bike. Eger hûn vegerin (fesadê) em ê jî (bi şandina evdên xwe yên xwedîhêz bi ser we de) vegerin. Me, cehennem ji bo kafiran kiriye girtîgeh/zindan.

**9.** Bêguman ev Qur'an digihîne rêya herî rast û (bi vê heqîqetê) mizgînê dide mumînên amelên salih dikin ku ji wan re xelateke mezin heye.

**10.** Û ew kesên îmân bi axîretê neanîne jî (bi vê heqîqetê) mizgînê bide wan ku me ji wan re ezabekî biêş û jan amade kiriye.

**11.** Însan wekî ku ji bo xêrê dûa dike, (di demên tengezarî û acizîyê de bi nifiran) ji bo şerrê jî dûa dike. Bi rastî însan pir lezgîn e.

**12.** Me şev û roj (ji bo delaleta qudret û ezameta Allah) kiriye du ayet. Me ayeta şevê jêbir/vemirand û rojê xûya kir da ku hûn ji lutf û îhsana Rabbê xwe bigerin. (Wekî din, da ku) hûn hejmara salan û hisabê bizanibin. Me, bi vê awayê her tişt bi teferûet/bi kitekit beyan kir.

**13.** Me (sahîfeya nivîsandî ya) amelên însan bi sitûyê wî ve daleqandîye. Em ê roja qîyametê jê re Kitêbekê derêxin. Ew jî wê (Kitêbê) li ber xwe vekirî dibîne.

**14.** "Kitêba xwe bixwîne! Îro ji hisab pirskirinê re nefsa te besî te ye."

**15.** Kî bigihîje hîdayetê ew ji bo xwe gihîştîye hîdayetê. Kî jî bixerife di eleyha xwe de dixerife. Qet tu gunehkarek gunehê kesekî din hilnagire. Em heta pêxemberekî neşînin (li civakekî) ezab nakin.
(Allah (ac) pêxemberên wek hişyarker û mizgînvan şandîye (4/Nîsa, 165); rasûlên ku her qewmê dawetê tewhîdê kirine her dem hebûne (16/Nehl, 36); ji ber ku ji hêla/ji alîyê Allah (ac) huccet gihaye hemû însanan êdî kes nikare hincetekî/mazeretekî teqdîmê Allah (ac) bike. (Bnr.7/A'raf, 172-173; 28/Qasas, 46))

**16.** Dema em bixwazin warekî helak bikin, em li wan ên di kamranê de/di halxweşîyê de emrê (îtaeta bi Allah) dikin. (Lê ew îtaet nakin û) di wir de fesadîyê dikin. Êdî hukmê (ezabê) li ser wan heq dibe û em wê derê serûbinî hev dikin.

**17.** Me di pey Nûh de gelek nesil/nifş helak kirin! (Gelî mucrîmên Mekkeyê! Hûn ji wan ne bi rûmettir in.) Bi agahdarî û bi dîtina gunehên evdên xwe Rabbê te bes e.

مَنْ كَانَ يُرِيدُ الْعَاجِلَةَ عَجَّلْنَا لَهُ فِيهَا مَا نَشَٓاءُ لِمَنْ نُرِيدُ
ثُمَّ جَعَلْنَا لَهُ جَهَنَّمَۚ يَصْلٰيهَا مَذْمُومًا مَدْحُورًا ﴿١٨﴾ وَمَنْ اَرَادَ
الْاٰخِرَةَ وَسَعٰى لَهَا سَعْيَهَا وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَاُو۬لٰٓئِكَ كَانَ سَعْيُهُمْ
مَشْكُورًا ﴿١٩﴾ كُلًّا نُمِدُّ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ وَهٰٓؤُ۬لَٓاءِ مِنْ عَطَٓاءِ رَبِّكَۜ
وَمَا كَانَ عَطَٓاءُ رَبِّكَ مَحْظُورًا ﴿٢٠﴾ اُنْظُرْ كَيْفَ فَضَّلْنَا
بَعْضَهُمْ عَلٰى بَعْضٍۜ وَلَلْاٰخِرَةُ اَكْبَرُ دَرَجَاتٍ وَاَكْبَرُ تَفْضِيلًا ﴿٢١﴾
لَا تَجْعَلْ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ فَتَقْعُدَ مَذْمُومًا مَخْذُولًاۚ ﴿٢٢﴾
وَقَضٰى رَبُّكَ اَلَّا تَعْبُدُٓوا اِلَّٓا اِيَّاهُ وَبِالْوَالِدَيْنِ اِحْسَانًاۜ اِمَّا يَبْلُغَنَّ
عِنْدَكَ الْكِبَرَ اَحَدُهُمَٓا اَوْ كِلَاهُمَا فَلَا تَقُلْ لَهُمَٓا اُفٍّ
وَلَا تَنْهَرْهُمَا وَقُلْ لَهُمَا قَوْلًا كَرِيمًا ﴿٢٣﴾ وَاخْفِضْ لَهُمَا جَنَاحَ
الذُّلِّ مِنَ الرَّحْمَةِ وَقُلْ رَبِّ ارْحَمْهُمَا كَمَا رَبَّيَانِي صَغِيرًاۜ ﴿٢٤﴾
رَبُّكُمْ اَعْلَمُ بِمَا فِي نُفُوسِكُمْۜ اِنْ تَكُونُوا صَالِحِينَ
فَاِنَّهُ كَانَ لِلْاَوَّابِينَ غَفُورًا ﴿٢٥﴾ وَاٰتِ ذَا الْقُرْبٰى حَقَّهُ
وَالْمِسْكِينَ وَابْنَ السَّبِيلِ وَلَا تُبَذِّرْ تَبْذِيرًا ﴿٢٦﴾ اِنَّ الْمُبَذِّرِينَ
كَانُٓوا اِخْوَانَ الشَّيَاطِينِۜ وَكَانَ الشَّيْطَانُ لِرَبِّهِ كَفُورًا ﴿٢٧﴾

**18.** Her kî (bi kar û kirinên xwe) ya pêşîn/ya bilez (dinyayê) bixwaze, em ji kî re bivên bi daxwaza xwe didin wî. Paşê bi gilî û bi gazin û (ji rehma Allah) wek qewirandî jê re dikin cehennemeke ku dikevê.

**19.** Kî jî warê axîretê bixwaze û ji bo wê wek mumîn bixebite, xebata wan wê bi zêdehayî bê pejirandin/qebûlkirin.

**20.** Em ê ji bexşa/ji îhsana Rabbê te bidin wan (ên ku axîretê dixwazin) jî û ew ên din (ku daxwaza dinyayê dikin) jî. Bexşa/îhsana Rabbê te ji tu kesî re nehatîye birîn.

**21.** Binêre! Me çawa hinekên ji wan di ser hinekan re girtine. Bêguman derece û serdestîya axîretê herî mezintir e.

**22.** Digel Allah îlâhekî din negire/danehêne! Nexwe tu yê wek zemkirî û bêalîkar matmayî bimînî.

**23.** Rabbê te (bi vê pêwistîyê) hukim verbirîyê ku; ji wî pê ve ji kesî re îbadet nekin û ji dê û bavê xwe re qencîyê bikin. Eger ji wan yek an jî her du li cem te pîr bibin ji wan re nebêjin “Of” jî. Wan ne azirîne û gotina xweş ji wan re bibêje.

**24.** Ji wan re bi hestên dilovanî tevbigere û dilnizm be (wan têxe bin baskên xwe yê merhamet û dildarîyê) û bibêje: “Rabbê min! Çawa ku wan min mezin kirin û gihandin tu jî bi rehma xwe bi wan re bike.”

**25.** Rabbê we bi tiştên di nefsên we de ye herî qenc dizane. Eger hûn bibin însanên salih, qet tu guman tune ku (Allah) ji bo wan ên ku berê xwe pirzêde didin wî/ji bo wan ên ewwabîn re pir bexşende ye/xafûr e.

**26.** Heqê eqrebayan û miskînan/xîzanên muhtac û rêwîyên di rê de mane bidin wan, lê bi vir de wir de nereşîne/belav neke.

**27.** (Lewre) kesên ku vir de wir de direşînin/îsraf dikin, birayên şeytan in. Lê şeytan bixwe li dij Rabbê xwe pir nankor e.

وَاِمَّا تُعْرِضَنَّ عَنْهُمُ ابْتِغَٓاءَ رَحْمَةٍ مِنْ رَبِّكَ تَرْجُوهَا فَقُلْ
لَهُمْ قَوْلًا مَيْسُورًا ﴿٢٨﴾ وَلَا تَجْعَلْ يَدَكَ مَغْلُولَةً اِلٰى عُنُقِكَ
وَلَا تَبْسُطْهَا كُلَّ الْبَسْطِ فَتَقْعُدَ مَلُومًا مَحْسُورًا ﴿٢٩﴾
اِنَّ رَبَّكَ يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَٓاءُ وَيَقْدِرُ اِنَّهُ كَانَ بِعِبَادِهٖ خَبِيرًا
بَصِيرًا ﴿٣٠﴾ وَلَا تَقْتُلُٓوا اَوْلَادَكُمْ خَشْيَةَ اِمْلَاقٍ نَحْنُ نَرْزُقُهُمْ
وَاِيَّاكُمْ اِنَّ قَتْلَهُمْ كَانَ خِطْـًٔا كَبِيرًا ﴿٣١﴾ وَلَا تَقْرَبُوا الزِّنٰٓى اِنَّهُ
كَانَ فَاحِشَةً وَسَٓاءَ سَبِيلًا ﴿٣٢﴾ وَلَا تَقْتُلُوا النَّفْسَ الَّتِى حَرَّمَ اللّٰهُ
اِلَّا بِالْحَقِّ وَمَنْ قُتِلَ مَظْلُومًا فَقَدْ جَعَلْنَا لِوَلِيِّهٖ سُلْطَانًا
فَلَا يُسْرِفْ فِى الْقَتْلِ اِنَّهُ كَانَ مَنْصُورًا ﴿٣٣﴾ وَلَا تَقْرَبُوا مَالَ الْيَتٖيمِ
اِلَّا بِالَّتٖى هِىَ اَحْسَنُ حَتّٰى يَبْلُغَ اَشُدَّهُ وَاَوْفُوا بِالْعَهْدِ اِنَّ الْعَهْدَ
كَانَ مَسْؤُلًا ﴿٣٤﴾ وَاَوْفُوا الْكَيْلَ اِذَا كِلْتُمْ وَزِنُوا بِالْقِسْطَاسِ
الْمُسْتَقٖيمِ ذٰلِكَ خَيْرٌ وَاَحْسَنُ تَأْوٖيلًا ﴿٣٥﴾ وَلَا تَقْفُ مَا لَيْسَ لَكَ
بِهٖ عِلْمٌ اِنَّ السَّمْعَ وَالْبَصَرَ وَالْفُؤَادَ كُلُّ اُولٰٓئِكَ كَانَ عَنْهُ مَسْؤُلًا ﴿٣٦﴾
وَلَا تَمْشِ فِى الْاَرْضِ مَرَحًا اِنَّكَ لَنْ تَخْرِقَ الْاَرْضَ وَلَنْ تَبْلُغَ
الْجِبَالَ طُولًا ﴿٣٧﴾ كُلُّ ذٰلِكَ كَانَ سَيِّئُهُ عِنْدَ رَبِّكَ مَكْرُوهًا ﴿٣٨﴾

**28.** Eger ji ber ku ew rahmeta Rabbê xwe hêvî dikin tu ji wan rû vegerînî, ji wan re gotina xweş bibêje.

(Mirovek, ji ber sedema wekî tengezarîya debarê an nexweşîna xwe eger nikaribe alîkarîya eqrebayan an jî xîzanan bike jî wiha lê hatîye emirkirin ku ji wan re wek teselli gotinên xweş bên gotin.)

**29.** Destê xwe li sitûyê xwe nepiçikîne (destgirtîtî/qesîsî neke) û bi tevahî jî veneke. Paşê tu ye wek lomedar û şerpeze heyirî bimînî.

**30.** Bêguman Rabbê te ji kî re daxwaz bike rizqê wî fireh an jî teng dike. Bêşik ew, li ser evdên xwe re (agahdarê her tiştî) Xabîr û (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e.

**31.** Ji tirsa xîzanîyê/feqîrtîyê zarokên xwe nekujin. Rizqê wan jî û rizqê we jî em didin. Bêşik kuştina wan, gunehekî zehf mezin e (cirmekî pir giran e).

(Bnr. 6/En'âm, 137)

**32.** Nêzîkî zinayê nebin! Bêguman ew fehşayekî kirêt û rêyeke pîs e.

**33.** Canê ku Allah (kuştina wê) heram kiriye, ne li ser heqîyê (ya ku li gorî şerîetê heq) be nekujin. Kî jî wek mezlum bê kuştin, bêşik me raye (ya qisasê) daye / welîyê wî. Nexwe bila ew jî di qisasê de/di kuştinê de bêpîvanî/zêdegavî neke. Lewre alîkarîya wî hatîye kirin.

**34.** Hetanî azeb bibin/bigîjin kemalê, bi awayekî xweşik pê ve nêzîkî malê sêwîyan nebin. Wefakarê ehdê xwe bin. Lewre her ehd, berpirsîyarî ye/mesûlîyet e.

**35.** Dema ku hûn dipîvin bêkêmahî/bi temamî bipîvin. Bi mêzêneke rasterast biwezinênin! Ev bi xêrtir e û wek encam herî xweşiktir e.

**36.** Ne de pey tiştê ku tu nizanî! Lewre gûh û çav û qelb ji van (ji tiştê dîtîye û bihîstîye û nîyet kiriye) hemû mesûl e.

**37.** Li ser rûyê erdê bi quretî bi rûgêrî nemeşe! Lewre tu ne dikarî erdê biqelişînî ne jî dikarî bigihîjî qam û bejna çiyan.

**38.** Xerabîya van hemûyan, li cem Rabbê te ji tiştên mekruh/kerîh in.

ذٰلِكَ مِمَّٓا اَوْحٰٓى اِلَيْكَ رَبُّكَ مِنَ الْحِكْمَةِۜ وَلَا تَجْعَلْ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا
اٰخَرَ فَتُلْقٰى فٖى جَهَنَّمَ مَلُومًا مَدْحُورًا ﴿٣٩﴾ اَفَاَصْفٰيكُمْ رَبُّكُمْ
بِالْبَنٖينَ وَاتَّخَذَ مِنَ الْمَلٰٓئِكَةِ اِنَاثًاۜ اِنَّكُمْ لَتَقُولُونَ قَوْلًا عَظٖيمًا ﴿٤٠﴾
وَلَقَدْ صَرَّفْنَا فٖى هٰذَا الْقُرْاٰنِ لِيَذَّكَّرُواۜ وَمَا يَزٖيدُهُمْ اِلَّا نُفُورًا ﴿٤١﴾
قُلْ لَوْ كَانَ مَعَهُٓ اٰلِهَةٌ كَمَا يَقُولُونَ اِذًا لَابْتَغَوْا اِلٰى ذِى
الْعَرْشِ سَبٖيلًا ﴿٤٢﴾ سُبْحَانَهُ وَتَعَالٰى عَمَّا يَقُولُونَ عُلُوًّا كَبٖيرًا ﴿٤٣﴾
تُسَبِّحُ لَهُ السَّمٰوَاتُ السَّبْعُ وَالْاَرْضُ وَمَنْ فٖيهِنَّۜ وَاِنْ مِنْ شَیْءٍ
اِلَّا يُسَبِّحُ بِحَمْدِهٖ وَلٰكِنْ لَا تَفْقَهُونَ تَسْبٖيحَهُمْۜ اِنَّهُ كَانَ حَلٖيمًا
غَفُورًا ﴿٤٤﴾ وَاِذَا قَرَاْتَ الْقُرْاٰنَ جَعَلْنَا بَيْنَكَ وَبَيْنَ الَّذٖينَ
لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ حِجَابًا مَسْتُورًاۙ ﴿٤٥﴾ وَجَعَلْنَا عَلٰى قُلُوبِهِمْ اَكِنَّةً
اَنْ يَفْقَهُوهُ وَفٖٓى اٰذَانِهِمْ وَقْرًاۜ وَاِذَا ذَكَرْتَ رَبَّكَ فِى الْقُرْاٰنِ وَحْدَهُ وَلَّوْا
عَلٰٓى اَدْبَارِهِمْ نُفُورًا ﴿٤٦﴾ نَحْنُ اَعْلَمُ بِمَا يَسْتَمِعُونَ بِهٖٓ اِذْ يَسْتَمِعُونَ اِلَيْكَ
وَاِذْ هُمْ نَجْوٰٓى اِذْ يَقُولُ الظَّالِمُونَ اِنْ تَتَّبِعُونَ اِلَّا رَجُلًا مَسْحُورًا ﴿٤٧﴾
اُنْظُرْ كَيْفَ ضَرَبُوا لَكَ الْاَمْثَالَ فَضَلُّوا فَلَا يَسْتَطٖيعُونَ سَبٖيلًا ﴿٤٨﴾
وَقَالُٓوا ءَاِذَا كُنَّا عِظَامًا وَرُفَاتًا ءَاِنَّا لَمَبْعُوثُونَ خَلْقًا جَدٖيدًا ﴿٤٩﴾

**39.** Ha ev, ew hikmet in ku Rabbê te ji te re wehîy kirine. Digel Allah îlâhekî din negire/danehêne! Nexwe tu yê wek zemkirî û qewirandî bi cehennemê ve bêyî avêtin.

**40.** Ma Rabbê we bi dayîna wan, ji we re zaroyên kurîn û ji bo xwe jî ji melâîketan keç hilbijartîye? Bêşik hûn gotineke pir mezin dibêjin.

**41.** Sond be, ji bo ku şîretan bigirin me di vê Qur'anê de (heqîqetan) bi gelek awayî ji wan re beyan kir. Lê belê (ev ê ha,) rev û dûrbûna wan zêdetir kir.

**42.** Bibêje: "Eger wekî ku îdîa dikin, (digel Allah) hin îlâhên din hebûna (wê demê ew îlâh) ji bo ku herin cem Rabbê arşê wê li rêyan (wê bi tenê îbadetê wî bikirana û li pey razîbûna wî) bigerîyana.

**43.** Ew (Allah) ji wan tiştên ku dibêjin munezzeh e/berî ye û herî berz û bilind e.

**44.** Heft esman û erd û tiştên di navbera wan de hene wî tesbîh dikin. Tiştekî ku wî bi hemd/bi pesinandin tesbîh nake, tune. Lê belê hûn tesbîhên wan fêm nakin. Bêguman ew, (wê cezaya ku heq dikin jî ji ser evdên xwe bi paş ve davêje/texîr dike) Halîm û (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr e.

**45.** Dema tu Qur'anê bixwînî, em di navbera te û ew ên bi axîretê îmân naynin de perdeyekê nexuyaye/manewî dikişinin.

**46.** Ji bo ku ji wê fêm nekin me perdeyek vezilandîye/vemitandîye ser dilê wan û li ser guhê wan jî giranîyek heye. Dema tu di Qur'anê de yekîtîya Rabbê xwe bi bîr tînî, bi kerb/bi nefret pişt xwe vedigerin û direvin diçin.

(Ji bo sebebên ji fêmkirina heqîyê re dibin asteng bnr. 6/En'am, 25.)

**47.** Dema ew li te (bi dizî) guhdarî dikin ka ew gûh didin çi û dema ew ên zalim di nav xwe de pistepistê dikin û dibêjin: "Hûn ji mirovekî ku bi sêhrê ketîye pê ve nadin pey tu kesî" em pir qenc dizanin.

**48.** Ka binêre der heqê te de (wekî mecnun û sêhrkirî) çawa mîsalan didin! Êdî ew nikarin/hêza wan nagihîje ku rê (ya rast) bibînin.

**49.** Gotin: "Dema ku em bibin hestî û ax û xwelî, ma em ê bi xuliqandinekî nû bêne vejandin?"

قُلْ كُونُوا حِجَارَةً اَوْ حَدِيدًاۙ ﴿٥٠﴾ اَوْ خَلْقًا مِمَّا يَكْبُرُ
فِي صُدُورِكُمْۚ فَسَيَقُولُونَ مَنْ يُعِيدُنَاۜ قُلِ الَّذِي فَطَرَكُمْ اَوَّلَ
مَرَّةٍۚ فَسَيُنْغِضُونَ اِلَيْكَ رُؤُسَهُمْ وَيَقُولُونَ مَتٰى هُوَۜ قُلْ عَسٰٓى
اَنْ يَكُونَ قَرِيبًا ﴿٥١﴾ يَوْمَ يَدْعُوكُمْ فَتَسْتَجِيبُونَ بِحَمْدِه۪
وَتَظُنُّونَ اِنْ لَبِثْتُمْ اِلَّا قَلِيلًا ﴿٥٢﴾ وَقُلْ لِعِبَادِي يَقُولُوا الَّتِي هِيَ
اَحْسَنُۜ اِنَّ الشَّيْطَانَ يَنْزَغُ بَيْنَهُمْۜ اِنَّ الشَّيْطَانَ كَانَ لِلْاِنْسَانِ
عَدُوًّا مُبِينًا ﴿٥٣﴾ رَبُّكُمْ اَعْلَمُ بِكُمْۜ اِنْ يَشَاْ يَرْحَمْكُمْ
اَوْ اِنْ يَشَاْ يُعَذِّبْكُمْۜ وَمَٓا اَرْسَلْنَاكَ عَلَيْهِمْ وَكِيلًا ﴿٥٤﴾ وَرَبُّكَ
اَعْلَمُ بِمَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَلَقَدْ فَضَّلْنَا بَعْضَ النَّبِيِّنَ
عَلٰى بَعْضٍ وَاٰتَيْنَا دَاوُ۫دَ زَبُورًا ﴿٥٥﴾ قُلِ ادْعُوا الَّذِينَ زَعَمْتُمْ مِنْ دُونِه۪
فَلَا يَمْلِكُونَ كَشْفَ الضُّرِّ عَنْكُمْ وَلَا تَحْوِيلًا ﴿٥٦﴾ اُو۬لٰٓئِكَ
الَّذِينَ يَدْعُونَ يَبْتَغُونَ اِلٰى رَبِّهِمُ الْوَسِيلَةَ اَيُّهُمْ اَقْرَبُ وَيَرْجُونَ
رَحْمَتَهُ وَيَخَافُونَ عَذَابَهُۜ اِنَّ عَذَابَ رَبِّكَ كَانَ مَحْذُورًا ﴿٥٧﴾
وَاِنْ مِنْ قَرْيَةٍ اِلَّا نَحْنُ مُهْلِكُوهَا قَبْلَ يَوْمِ الْقِيٰمَةِ اَوْ مُعَذِّبُوهَا
عَذَابًا شَدِيدًاۜ كَانَ ذٰلِكَ فِي الْكِتَابِ مَسْطُورًا ﴿٥٨﴾



**50.** Bibêje: “Dixwazin bibin kevir an jî bibin hesin!”

**51.** “An jî dixwazin bibin heyînekî ku hûn di dilê xwe de mezin dikin (hûn ê dîsa ji nû ve bên vejandin).” Wê bibêjin: “Ka kî dikare dîsa me bivejîne?” Bibêje: “Ew ê cara pêşî hûn xuliqandîye (dê we bivejîne)!” Wê serê xwe (bi biçûkdîtina te) bihejînin û bibêjin: “Ew kîngê ye?” Bibêje: “Dibe ku pir nêzîk be!”

**52.** Roja ku gazî we bike, hûn ê digel hemda jê re îcabetî wî bikin û hûn ê zen bikin ku qey demeke pir hindik li wir (li dinyayê) mane.

**53.** Ji evdên min re bibêje: “Bila (di têkilîyên navbera xwe de) gotina herî xweşik bibêjin. Lewre şeytan (bi peyvên diemilînin re) dixwaze navbera wan xera bike. Bêşik şeytan, ji bo însan dijminekî eşkere ye.

**54.** Rabbê we, (rewşa ku hûn tê de ne) herî çêtir dizane. Eger bivê rahmê li we dike û eger bivê dê ezab li we bike. Me tu li ser wan wek wekîl (ku ji her tiştên wan mesûl) ne şandîye.

**55.** Kesên li erd û esmanan hene, Rabbê te herî çêtir bi wan dizane. Sond be me hinek pêxember di ser hinekan re girtine û me Zebûr daye Dawud.

**56.** Bibêje: “De heydê gazî wan ên ku we der heqê wan de hêvîya (şefaetê û rayeya teserûfa di kaînatê de û nêzbûna Allah) dikirin, bikin (em binêrin)! Ew ne dikarin zerarekî ji ser we rakin û ne jî dikarin (hêza wan tune ku) rewşa we biguherînin.”

**57.** Ew (heyîn) ên ku ji wan re dûa dikin bixwe jî ji bo ku nêzî Rabbê xwe bibin li wesîleyan digerin û rahmeta wî dixwazin û ji ezaba wî ditirsin. Lewre ezaba Allah, pêwiste ku jê bê parastin.

(Abdullah b. Mesûd (re) wiha qotîye: “Ji muşrîkan hin kes perestîya cinan dikirin. Cinên ku muşrîkan perestî li wan dikirin piştre ketin îslâmê û ji bo nêzîkî Allah (ac) bibin dest bi amelên salih kirin. Muşrîkên ji vê rewşê ne agahdar bûn perestîya li cinan berdewam kirin.” (Buxarî, 4714; Mûslîm, 3030))

**58.** Qet tu bajar (ê gelê wî zalim in) tune ku an berî roja qiyametê em ê wan helak nekin an jî em ezabekî zor û asê li wî wan nekin. Ev, di Kitêbê (di Lewhu’l Mehfûzê) de nivîsandî ye.

وَمَا مَنَعَنَٓا اَنْ نُرْسِلَ بِالْاٰيَاتِ اِلَّٓا اَنْ كَذَّبَ بِهَا الْاَوَّلُونَۜ
وَاٰتَيْنَا ثَمُودَ النَّاقَةَ مُبْصِرَةً فَظَلَمُوا بِهَاۜ وَمَا نُرْسِلُ بِالْاٰيَاتِ
اِلَّا تَخْوِيفًا ﴿٥٩﴾ وَاِذْ قُلْنَا لَكَ اِنَّ رَبَّكَ اَحَاطَ بِالنَّاسِۜ
وَمَا جَعَلْنَا الرُّءْيَا الَّتٖٓي اَرَيْنَاكَ اِلَّا فِتْنَةً لِلنَّاسِ وَالشَّجَرَةَ
الْمَلْعُونَةَ فِي الْقُرْاٰنِۜ وَنُخَوِّفُهُمْۙ فَمَا يَزٖيدُهُمْ اِلَّا طُغْيَانًا كَبٖيرًا ﴿٦٠﴾
وَاِذْ قُلْنَا لِلْمَلٰٓئِكَةِ اسْجُدُوا لِاٰدَمَ فَسَجَدُٓوا اِلَّٓا اِبْلٖيسَۜ
قَالَ ءَاَسْجُدُ لِمَنْ خَلَقْتَ طٖينًاۚ ﴿٦١﴾ قَالَ اَرَاَيْتَكَ هٰذَا الَّذٖي
كَرَّمْتَ عَلَيَّۘ لَئِنْ اَخَّرْتَنِ اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ لَاَحْتَنِكَنَّ
ذُرِّيَّتَهُٓ اِلَّا قَلٖيلًا ﴿٦٢﴾ قَالَ اذْهَبْ فَمَنْ تَبِعَكَ مِنْهُمْ فَاِنَّ جَهَنَّمَ
جَزَٓاؤُكُمْ جَزَٓاءً مَوْفُورًا ﴿٦٣﴾ وَاسْتَفْزِزْ مَنِ اسْتَطَعْتَ مِنْهُمْ
بِصَوْتِكَ وَاَجْلِبْ عَلَيْهِمْ بِخَيْلِكَ وَرَجِلِكَ وَشَارِكْهُمْ
فِي الْاَمْوَالِ وَالْاَوْلَادِ وَعِدْهُمْۜ وَمَا يَعِدُهُمُ الشَّيْطَانُ
اِلَّا غُرُورًا ﴿٦٤﴾ اِنَّ عِبَادٖي لَيْسَ لَكَ عَلَيْهِمْ سُلْطَانٌۜ وَكَفٰى
بِرَبِّكَ وَكٖيلًا ﴿٦٥﴾ رَبُّكُمُ الَّذٖي يُزْجٖي لَكُمُ الْفُلْكَ
فِي الْبَحْرِ لِتَبْتَغُوا مِنْ فَضْلِهٖۜ اِنَّهُ كَانَ بِكُمْ رَحٖيمًا ﴿٦٦﴾

**59.** Tiştê ku me ji şandina ayetan/mucîzeyan paş ve dihêle tenê ev e ku, ew ên berê ew (ayet/mucîze) înkar kiribûn. Me wek (mucîzeyek) eşkere deveyeke mê da qewmê Semûd, (lê wan) zilim lê kirin. Em ayetan/mucîzeyan bitenê ji bo tirsandinê/xofandinê dişînin.

**60.** (Bi bîr bîne!) Me ji te re wiha gotibû: “Bêguman Rabbê te, hemû însanan bi çaralî dorpêç kiriye.” Ew xewna (bûyera Îsra û Mîracê) me nîşanî te da û dara (Zeqqûmê ya ku) di Qur'anê de hatîye lanetkirin me ji însanan re kir fitne. (Van tiştan gotin “Di şevekê de çawa ew qas rê çû? Ma di cehennemê de dar hene? Ew dar ji agirê cehennemê naşewitin? û ketin fitnê.) Em, wan ditirsînin. Lê (ev), ji tuxyaneke zêde pê ve tiştekî din li wan zêde nake.

**61.** Dema ku me ji melâîketan re gotibû: “Ji Âdem re secde bikin.” Ji xeynî îblîs hemûyan secde kiribûn. (Îblîs) got: “Qey ez tu cara ji wî kesê ku te ji herîyê xuliqandîye re secde dikim?”

**62.** (Îblîs) got: “Tu wî yê ku te ew ji min çêtir girtîye dibînî? Eger tu hetanî roja qiyametê muhletê bidî min ez ê ji hindikên wan pê ve yên mayîn têxim bin emrê xwe.”

**63.** (Allah) got: “Here! Êdî kî ji wan bide pey te, bêşik wê cehennem ji bo we bibe cezayê bêkêmasî.”

**64.** “Ji wan hêza te digihîje kîjanê, bi dengê xwe wan fît bike/biazirîne û bi (artêşên) siwarî û pîyadeyên xwe bi ser wan de here û di mal û zarokên wan de bibe şirîk û weadan li wan bike.” Tiştê ku şeytan li wan wead dike ji xapandinê pê ve ne tiştekî din e.

**65.** Bêguman li ser evdên min qet tu serwerîya te tune. Wek Wekîl (ku hemû karûbar hewaleyê wî dibin) Rabbê te bes e.

**66.** Ji bo ku hûn (ji xwe re) ji lutf û îhsana wî bigerin Rabbê we, ew e ku ji bona we li ser behrê (bi hêsanî) keştîyan dimeşîne. Bêşik ew, ji we re pir bi rehm e.

**98.** Got: “Ev, rahmetek ji Rabbê min e. Dema weada Rabbê min were dê wî serûbin bike. Weada Rabbê min heq e.”
(Bnr. 21/Enbîya, 96)

**99.** Ew roj qismekî ji wan li qismê (din) dikevin û em wan di rewşeke pêldayî de dihêlin. Li sûrê jî hatîye pif kirin. Em hemûyan li cem hev dicivînin.

**100.** Wê rojê me cehennem bi berpêşkirineke wisan pêşkêş kiriye û (anîye hafa) kafiran!

**101.** Ew in ku li dij zikrê (ayetên) min çavên wan nuxamtî bûn û ji guhdarîya (Qur'anê) re jî tehemûl/semax nedikirin.

**102.** Ma qey ew ên kafir zen dikin ku wê dev ji min berdin û evdên min ji xwe re bikin welî/dost (û ez ê jî vê şirka wan bê ceza bihêlim)? Bi rastî me cehennem ji bo kafiran kiriye wargehek.

**103.** Bibêje: “Ma em ji we re wan ên ku ji ber amelên xwe herî zêde zîyan kirine, bibêjin?”

**104.** Ew in ku; hemû keda wan a di heyata dinyayê de pûç û betal bûye jî lê dîsa zen dikin ku ew amelên qenc dikin.

**105.** Evana ew kes in ku ayetên Rabbê xwe û leqayîhatina wî înkar kirine, (herwiha) amelên wan pûç û betal bûye. Em roja qiyametê qet tu rûmetê nadin wan.

**106.** Ev cehennem, ji ber ku înkar kiribûn cezayê wan e. (Hem) tinazê bi ayetên min û rasûlên min kiribûn.

**107.** Bêguman ew ên îmân anîne û amelên salih kirine jî cihê wan cenetên Firdews in.

**108.** Wê di wir de ebedî bimînin û qet naxwazin ji wir derkevin.

**109.** Bibêje: “Eger ji bo (nivîsandina) kelîmeyên Rabbê min hemû behr bibûna hibir û me ewqasî din jî lê zêde bikira, (dîsa jî) berîya ku kelîmeyên Rabbê min xelas bibin ew ê behr biqedîyana.”

**110.** Bibêje: “Ez jî enceq wekî we beşerek im. Ji min re wiha tê wehîy kirin ku: ‘Îlâhê we enceq yek îlâh e.’ Êdî kî hêvî dike ku wê rastî Rabbê xwe bê (û mukâfatekê jê bistîne) bila amelên salih bike û qet tu tiştî ji Rabbê xwe re şirîk çêneke.”

قَالَ هٰذَا رَحْمَةٌ مِنْ رَبّ۪يۚ فَاِذَا جَٓاءَ وَعْدُ رَبّ۪ي جَعَلَهُ دَكَّٓاءَۚ وَكَانَ
وَعْدُ رَبّ۪ي حَقًّاۜ ﴿٩٨﴾ وَتَرَكْنَا بَعْضَهُمْ يَوْمَئِذٍ يَمُوجُ ف۪ي بَعْضٍ وَنُفِخَ
فِي الصُّورِ فَجَمَعْنَاهُمْ جَمْعًاۙ ﴿٩٩﴾ وَعَرَضْنَا جَهَنَّمَ يَوْمَئِذٍ لِلْكَافِر۪ينَ عَرْضًاۙ ﴿١٠٠﴾
اَلَّذ۪ينَ كَانَتْ اَعْيُنُهُمْ ف۪ي غِطَٓاءٍ عَنْ ذِكْر۪ي وَكَانُوا لَا يَسْتَط۪يعُونَ سَمْعًاۜ ﴿١٠١﴾
اَفَحَسِبَ الَّذ۪ينَ كَفَرُٓوا اَنْ يَتَّخِذُوا عِبَاد۪ي مِنْ دُون۪ٓي اَوْلِيَٓاءَۜ اِنَّٓا اَعْتَدْنَا
جَهَنَّمَ لِلْكَافِر۪ينَ نُزُلًا ﴿١٠٢﴾ قُلْ هَلْ نُنَبِّئُكُمْ بِالْاَخْسَر۪ينَ اَعْمَالًاۜ ﴿١٠٣﴾
اَلَّذ۪ينَ ضَلَّ سَعْيُهُمْ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَهُمْ يَحْسَبُونَ اَنَّهُمْ يُحْسِنُونَ
صُنْعًا ﴿١٠٤﴾ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا بِاٰيَاتِ رَبِّهِمْ وَلِقَٓائِه۪ فَحَبِطَتْ اَعْمَالُهُمْ
فَلَا نُق۪يمُ لَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ وَزْنًا ﴿١٠٥﴾ ذٰلِكَ جَزَٓاؤُ۬هُمْ جَهَنَّمُ بِمَا كَفَرُوا
وَاتَّخَذُٓوا اٰيَات۪ي وَرُسُل۪ي هُزُوًا ﴿١٠٦﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
كَانَتْ لَهُمْ جَنَّاتُ الْفِرْدَوْسِ نُزُلًاۙ ﴿١٠٧﴾ خَالِد۪ينَ ف۪يهَا لَا يَبْغُونَ عَنْهَا
حِوَلًا ﴿١٠٨﴾ قُلْ لَوْ كَانَ الْبَحْرُ مِدَادًا لِكَلِمَاتِ رَبّ۪ي لَنَفِدَ الْبَحْرُ
قَبْلَ اَنْ تَنْفَدَ كَلِمَاتُ رَبّ۪ي وَلَوْ جِئْنَا بِمِثْلِه۪ مَدَدًا ﴿١٠٩﴾ قُلْ اِنَّمَٓا اَنَا۬
بَشَرٌ مِثْلُكُمْ يُوحٰٓى اِلَيَّ اَنَّمَٓا اِلٰهُكُمْ اِلٰهٌ وَاحِدٌۚ فَمَنْ كَانَ يَرْجُوا
لِقَٓاءَ رَبِّه۪ فَلْيَعْمَلْ عَمَلًا صَالِحًا وَلَا يُشْرِكْ بِعِبَادَةِ رَبِّه۪ٓ اَحَدًا ﴿١١٠﴾

(Qur'ana Kerîm, ji bo pejirandina amelan ku ew amel li axîretê biguhere mukâfatê tehev/komînak sê şertan diyar kiriye ku ji wan du heb di vê ayetê de ne:
a. Ew kesê amel dike pewîst e ku li ser tewhîdê be, yanê muwahhîd be ku ji Allah (ac) re şirîk çênake. (Bnr. 14/Îbrahîm, 18; 24/Nûr, 39)
b. Pêwist e ku ew, amele salih be. Yanê li gorî şerîetê û sunneta pêxember be. (Bnr. 3/Âl-î Îmran, 31-32; 4/Nîsa, 64)
Rasûlullah (ass) wiha ferman kiriye: “Her kî amelekî bike û amelê ku kiriye ne li ser sunneta min be ew amêlê wî merdûd e/ne meqbûl e.” (Buxarî, 2697; Muslîm, 1718)
c. Divê ew amel bi îxlâs be. Amel, divê tenê bitenê ji bo razîbûna Allah pêk bê û qet tu xaye û meqsedekî din tevlî wê amelê neke. Rasûlullah (ass) wiha ferman kiriye: “Allah (ac) di roja qiyametê de wiha ferman dike: “Ez ji şirkê mustexnî me/berî me/dûr im. Kî amelekî bike û di amelê xwe de ji xeynî min kesekî din bike şirîk ez wî jî û amelê wî jî diterikînim.” (Muslîm, 2985)




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
كٓهٰيٰعٓصٓ ﴿١﴾ ذِكْرُ رَحْمَتِ رَبِّكَ عَبْدَهُ زَكَرِيَّاۚ ﴿٢﴾
اِذْ نَادٰى رَبَّهُ نِدَٓاءً خَفِيًّا ﴿٣﴾ قَالَ رَبِّ اِنّ۪ي وَهَنَ الْعَظْمُ مِنّ۪ي
وَاشْتَعَلَ الرَّأْسُ شَيْبًا وَلَمْ اَكُنْ بِدُعَٓائِكَ رَبِّ شَقِيًّا ﴿٤﴾
وَاِنّ۪ي خِفْتُ الْمَوَالِيَ مِنْ وَرَٓاء۪ي وَكَانَتِ امْرَاَت۪ي عَاقِرًا فَهَبْ ل۪ي
مِنْ لَدُنْكَ وَلِيًّاۙ ﴿٥﴾ يَرِثُن۪ي وَيَرِثُ مِنْ اٰلِ يَعْقُوبَۗ وَاجْعَلْهُ
رَبِّ رَضِيًّا ﴿٦﴾ يَا زَكَرِيَّٓا اِنَّا نُبَشِّرُكَ بِغُلَامٍۨ اسْمُهُ يَحْيٰىۙ
لَمْ نَجْعَلْ لَهُ مِنْ قَبْلُ سَمِيًّا ﴿٧﴾ قَالَ رَبِّ اَنّٰى يَكُونُ ل۪ي
غُلَامٌ وَكَانَتِ امْرَاَت۪ي عَاقِرًا وَقَدْ بَلَغْتُ مِنَ الْكِبَرِ عِتِيًّا ﴿٨﴾
قَالَ كَذٰلِكَۚ قَالَ رَبُّكَ هُوَ عَلَيَّ هَيِّنٌ وَقَدْ خَلَقْتُكَ
مِنْ قَبْلُ وَلَمْ تَكُ شَيْـًٔا ﴿٩﴾ قَالَ رَبِّ اجْعَلْ ل۪ٓي اٰيَةًۜ قَالَ اٰيَتُكَ
اَلَّا تُكَلِّمَ النَّاسَ ثَلٰثَ لَيَالٍ سَوِيًّا ﴿١٠﴾ فَخَرَجَ عَلٰى قَوْمِه۪
مِنَ الْمِحْرَابِ فَاَوْحٰٓى اِلَيْهِمْ اَنْ سَبِّحُوا بُكْرَةً وَعَشِيًّا ﴿١١﴾



## 19. SÛREYA MERYEM

*(Ev sûre, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û not û heşt (98) ayet e. Di Qur'anê de sûreya nozdehem e)*

*Di Qur'anê de sûreya nozdehem e. Sûre, welidîna Îsa û rewşa asaleta/zadeganîya Meryem vedibêje. Ji ber vê yekê ev sûre bi navê Meryem hatîye navandin. Di sûreyê de hin qiseyên pêxemberan li ser bingeha tewhîdê û sehneyên qiyametê tên bi dest girtin. Sûre, herwisa behsa gazîkirina Îbrahîm (as) ku bavê xwe dawetê tewhîdê dike û ji pêxemberan Mûsa û Harûn û Îsmaîl û Îdrîs (asm) û rewşa wan ên înkar dikin û behsa wan muwahhîdên qencîkar ku wê bikevin cennetê dike.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim).*

**1.** Kâf. Hâ. Yâ. Ayn. Sâd.

**2.** Ev (ayetên ku wê bên xwendin) bibîrxistina rahmeta Rabbê te ye ku ji evdê xwe Zekerîya re kiriye.

**3.** Wî, wextekî bi dizîka gazî Rabbê xwe kiribû.

**4.** Got: "Rabbê min! Hestîyê min zeîf bûn û pora min jî sipspî bû. Ji ber dûayên ku min ji te re kirin ez tu caran bextreş/bêhêvî nebûme. (Min kengê ji te re dûa kiribe te îcabet kiriye.)"

**5.** "Bêguman ez di pey xwe de ji eqrebayên xwe ditirsim. Hem hevjîna min jî jineke sêr e/nezayok e. Tu ji cem xwe welîyekî (ewladekî ku bibe warisê nubûwetê) îhsan bike."

**6.** "Da ku (îlm û hîkmeta ) min û malbata Yaqûb (a li pey xwe hiştine re) bibe waris. Rabbê min! Wî bike ji ew ên ku tu ji wan razî bûyî."

**7.** "Ya Zekerîya! Em mizgînîya zarokekî ku navê wî Yahyâ ye didin te. Me berê de tu kesî ji wî re nekiriye hevnav."

**8.** Got: "Rabbê min! Jina min nezayok e û ez jî gihîştime dawîya kalîtîya xwe, ka wê zarokê min çawa çêbe?"

**9.** (Melaîket got:) "Ha wiha!" Rabbê te qotîye: "Ew, ji min re pir hêsan e. Berê de tu ne tiştek bûyî lê min tu xuliqandibû. (Qey te ji bîr kir?)"

**10.** Got: "Rabbê min! Ayetekî/Elametekî (li ser pêkhatina weada te ku dilê min pê qewî bibe) bide min." (Allah) Got: "Elameta te ev e; digel ku tu ne nexweşî jî tuyê bi dirêjahîya sê rojan bi tu kesî re nikaribî biaxivî."

**11.** Ji mîhrabê derket û hat cem qewmê xwe û ji wan re îşaret kir (got:) "Hûn sibeh û êvaran (Allah) tesbîh bikin."

يَا يَحْيٰى خُذِ الْكِتَابَ بِقُوَّةٍۜ وَاٰتَيْنَاهُ الْحُكْمَ صَبِيًّاۙ ﴿١٢﴾
وَحَنَانًا مِنْ لَدُنَّا وَزَكٰوةًۜ وَكَانَ تَقِيًّاۙ ﴿١٣﴾ وَبَرًّا بِوَالِدَيْهِ
وَلَمْ يَكُنْ جَبَّارًا عَصِيًّا ﴿١٤﴾ وَسَلَامٌ عَلَيْهِ يَوْمَ وُلِدَ وَيَوْمَ
يَمُوتُ وَيَوْمَ يُبْعَثُ حَيًّا ﴿١٥﴾ وَاذْكُرْ فِي الْكِتَابِ مَرْيَمَ
اِذِ انْتَبَذَتْ مِنْ اَهْلِهَا مَكَانًا شَرْقِيًّاۙ ﴿١٦﴾ فَاتَّخَذَتْ
مِنْ دُونِهِمْ حِجَابًا فَاَرْسَلْنَٓا اِلَيْهَا رُوحَنَا فَتَمَثَّلَ لَهَا بَشَرًا سَوِيًّا ﴿١٧﴾
قَالَتْ اِنّ۪ٓي اَعُوذُ بِالرَّحْمٰنِ مِنْكَ اِنْ كُنْتَ تَقِيًّا ﴿١٨﴾ قَالَ
اِنَّمَٓا اَنَا رَسُولُ رَبِّكِۗ لِاَهَبَ لَكِ غُلَامًا زَكِيًّا ﴿١٩﴾ قَالَتْ
اَنّٰى يَكُونُ ل۪ي غُلَامٌ وَلَمْ يَمْسَسْن۪ي بَشَرٌ وَلَمْ اَكُ بَغِيًّا ﴿٢٠﴾
قَالَ كَذٰلِكِۚ قَالَ رَبُّكِ هُوَ عَلَيَّ هَيِّنٌۚ وَلِنَجْعَلَهُٓ اٰيَةً لِلنَّاسِ
وَرَحْمَةً مِنَّاۚ وَكَانَ اَمْرًا مَقْضِيًّا ﴿٢١﴾ فَحَمَلَتْهُ فَانْتَبَذَتْ
بِه۪ مَكَانًا قَصِيًّا ﴿٢٢﴾ فَاَجَٓاءَهَا الْمَخَاضُ اِلٰى جِذْعِ النَّخْلَةِۚ
قَالَتْ يَا لَيْتَن۪ي مِتُّ قَبْلَ هٰذَا وَكُنْتُ نَسْيًا مَنْسِيًّا ﴿٢٣﴾
فَنَادٰيهَا مِنْ تَحْتِهَٓا اَلَّا تَحْزَن۪ي قَدْ جَعَلَ رَبُّكِ تَحْتَكِ سَرِيًّا ﴿٢٤﴾
وَهُزّ۪ٓي اِلَيْكِ بِجِذْعِ النَّخْلَةِ تُسَاقِطْ عَلَيْكِ رُطَبًا جَنِيًّا ﴿٢٥﴾

**12.** (Me jê re got:) "Ya Yahyâ! Kitêbê bi hêz bigire." Me hêj di zaroktîya wî de hikum/hikmet dabûyê.

**13.** Me ji cem xwe ve zerafet/dilnermî/henûnî û pakî (dabûyê). Ew, yekî pir bi teqwa bû.

**14.** Ji dê û bavê xwe re pir baş bû, li dij wan ne zordar û asê bû.

**15.** Di roja welidîye/hatîye dinyayê de û roja bimire û roja wê ji nû de bê vejandin de silav li ser be.

**16.** Di Kitêbê de Meryem jî bi bîr bîne! Ew di demekî de ji malbata xwe dûr ketibû û bi alî rojhilat ve çûbû.

**17.** Di navbera xwe û wan de perdeyek kişandibû (da ku wê nebînin). Me jî rûhê xwe (Cebraîl) ji wê re şandibû. Ew ji wê re di sûreta însanekî tekûz/serfesal de xûya bibû.

**18.** (Meryem) got: "Eger tu kesekî xwedî teqwa bî (têkilî min nebe). Ez, bi (wî Allahê) Rahmân xwe ji te diparêzim."

**19.** (Cibrîl) got: "Ez bi tenê qasidê Rabbê xwe me. Ji bo ku ez kurekî paqij bidim te (li vê derê me).

**20.** Got: "Digel ku qet (destê) însanekî li min neketîye û ez ne jineke nedirêde me jî (tiştekî pir ecêb e) ka çawa dibe ku wê zarokê min çêbe?

**21.** (Cibrîl) got: "Ha wisan! Rabbê te got: 'Ev, ji bo min hêsan e.' " (Ev zarok) ji bo ku ji însanan re bibe ayetek/delîlek û ji alî me ve jî bibe rahmetek e. Û biryara vê karê hatibû dayîn û qedîyayî bû.

**22.** (Li ser vê) li wî (li Îsa) biheml ma. Û bi wî re çû cihekî dûr/cihekî xewle.

**23.** Jan ên hemlebûnê kir ku pala xwe bide dara xurmê û hetanî wiha got: "Xwezî, berî niha/berîya vêga ez bimirana û ez ji binî ve bihatama ji bîr kirin."

**24.** (Yekî) ji bin wê ve gazî wê kir û got: "Xemgîn nebe! Rabbê te ji bin te ve coyeke avê anîye holê."

**25.** "Gulîyê/çiqilê dara xurmê ber bi xwe ve biweşîne! Da ku xurmeyên nû gihîştine bi ser te ve biweşin."

فَكُلِي وَاشْرَبِي وَقَرِّي عَيْنًاۚ فَاِمَّا تَرَيِنَّ مِنَ الْبَشَرِ اَحَدًاۙ فَقُولِٓي
اِنِّي نَذَرْتُ لِلرَّحْمٰنِ صَوْمًا فَلَنْ اُكَلِّمَ الْيَوْمَ اِنْسِيًّاۚ ﴿٢٦﴾
فَاَتَتْ بِهِ قَوْمَهَا تَحْمِلُهُۜ قَالُوا يَا مَرْيَمُ لَقَدْ جِئْتِ شَيْـًٔا فَرِيًّا ﴿٢٧﴾
يَٓا اُخْتَ هٰرُونَ مَا كَانَ اَبُوكِ امْرَاَ سَوْءٍ وَمَا كَانَتْ اُمُّكِ
بَغِيًّاۚ ﴿٢٨﴾ فَاَشَارَتْ اِلَيْهِۜ قَالُوا كَيْفَ نُكَلِّمُ مَنْ كَانَ فِي الْمَهْدِ
صَبِيًّا ﴿٢٩﴾ قَالَ اِنِّي عَبْدُ اللّٰهِ اٰتٰنِيَ الْكِتَابَ وَجَعَلَنِي نَبِيًّاۙ ﴿٣٠﴾
وَجَعَلَنِي مُبَارَكًا اَيْنَ مَا كُنْتُۖ وَاَوْصَانِي بِالصَّلٰوةِ وَالزَّكٰوةِ
مَا دُمْتُ حَيًّاۖ ﴿٣١﴾ وَبَرًّا بِوَالِدَتِيۘ وَلَمْ يَجْعَلْنِي جَبَّارًا شَقِيًّا ﴿٣٢﴾
وَالسَّلَامُ عَلَيَّ يَوْمَ وُلِدْتُ وَيَوْمَ اَمُوتُ وَيَوْمَ اُبْعَثُ حَيًّا ﴿٣٣﴾
ذٰلِكَ عِيسَى ابْنُ مَرْيَمَۚ قَوْلَ الْحَقِّ الَّذِي فِيهِ يَمْتَرُونَ ﴿٣٤﴾
مَا كَانَ لِلّٰهِ اَنْ يَتَّخِذَ مِنْ وَلَدٍۙ سُبْحَانَهُۜ اِذَا قَضٰٓى اَمْرًا فَاِنَّمَا
يَقُولُ لَهُ كُنْ فَيَكُونُۜ ﴿٣٥﴾ وَاِنَّ اللّٰهَ رَبِّي وَرَبُّكُمْ فَاعْبُدُوهُۜ
هٰذَا صِرَاطٌ مُسْتَقِيمٌ ﴿٣٦﴾ فَاخْتَلَفَ الْاَحْزَابُ مِنْ بَيْنِهِمْۚ
فَوَيْلٌ لِلَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ مَشْهَدِ يَوْمٍ عَظِيمٍ ﴿٣٧﴾ اَسْمِعْ بِهِمْ
وَاَبْصِرْۙ يَوْمَ يَأْتُونَنَا لٰكِنِ الظَّالِمُونَ الْيَوْمَ فِي ضَلَالٍ مُبِينٍ ﴿٣٨﴾

**26.** “Êdî bixwe û vexwe û bila çavên te ronî/dilê te rihet be. Eger tu ji însanan yekî bibînî bibêje: “Min ji Rahmân re rojî (ya nepeyivînê) nezir kiriye. Îro ez ê bi tu însanî re neaxivim.”

**27.** Wî hilgirt û anî cem qewmê xwe. Gotin: “Ya Meryem! Sond be te karekî pir mezin (ecêbmayî) kiriye.”

**28.** “Ya xuşka Harûn! Bavê te ne mirovekî xerab bû û dêya te jî ne jineke nebaş bû (ne jineke zinakar bû).”

**29.** (Wê, dergûş) îşaret kir. Gotin: “Em ê bi sebîyekî ku hêj di dergûşê de re çawa bipeyivin?”

**30.** (Zarok hate ser ziman û) got: “Bêguman ez, evdê Allah im. Wî Kitêb da min û ez kirim nebiyek.”

**31.** “Û ez li ku dibim bila bibim, wî ez mubarek kirim. Hetanî ez sax bim emrê nimêj û zekâtê li min kir.”

**32.** (Ez) ji dêya xwe re hurmetkar kirim. Û ez (li dij wê) nekirime zordestekî bextreş.”

**33.** “Roja ez welidî me û roja ez ê bimirim û roja ez ê ji nû ve bêm vejandin silav li ser min e.”

**34.** Ha ev Îsayê kurê Meryem e ku li ser wî diketin gumanê/nîqaşê! Gotina heq (ya der barê wî de) ev e.




**35.** Qet nabe ku Allah ji xwe re zarok bigire. Ew (ji hemû kêmasîyan) berî ye/munezzeh e. Dema ew bixwaze tiştek bibe bitenê dibêje “Bibe!” û ew jî dibe. (Ji bo pêkanîna tiştekî çawa ku hûn muhtacê sebeban e hewcetîya Allah ji tu sebebê re tune. Ew xaliqê mutleq e.)

**36.** (Îsa got:) “Bêguman Allah Rabbê min e jî û Rabbê we ye jî. (Herwiha) ji wî re îbadet bikin. Rêya rasterast ev e.”

**37.** (Digel vê, hin) kom/firqe di nav xwe de ketin îxtîlafê. Ji ber wê roja mezin ku wê tê de amade bibin weyl li wan kafiran be.

**38.** Roja ku dê werin cem me wê çi ecêban bibînin û çi seh bikin. Lê îro ew ên zalim di xerifîyeke eşkere de ne.

وَاَنْذِرْهُمْ يَوْمَ الْحَسْرَةِ اِذْ قُضِيَ الْاَمْرُۢ وَهُمْ فٖي غَفْلَةٍ وَهُمْ
لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٣٩﴾ اِنَّا نَحْنُ نَرِثُ الْاَرْضَ وَمَنْ عَلَيْهَا وَاِلَيْنَا يُرْجَعُونَ ﴿٤٠﴾
وَاذْكُرْ فِي الْكِتَابِ اِبْرٰهٖيمَۜ اِنَّهُ كَانَ صِدّٖيقًا نَبِيًّا ﴿٤١﴾
اِذْ قَالَ لِاَبٖيهِ يَٓا اَبَتِ لِمَ تَعْبُدُ مَا لَا يَسْمَعُ وَلَا يُبْصِرُ وَلَا يُغْنٖي
عَنْكَ شَيْـًٔا ﴿٤٢﴾ يَٓا اَبَتِ اِنّٖي قَدْ جَٓاءَنٖي مِنَ الْعِلْمِ مَا لَمْ يَأْتِكَ
فَاتَّبِعْنٖٓي اَهْدِكَ صِرَاطًا سَوِيًّا ﴿٤٣﴾ يَٓا اَبَتِ لَا تَعْبُدِ الشَّيْطَانَۜ
اِنَّ الشَّيْطَانَ كَانَ لِلرَّحْمٰنِ عَصِيًّا ﴿٤٤﴾ يَٓا اَبَتِ اِنّٖٓي اَخَافُ اَنْ يَمَسَّكَ
عَذَابٌ مِنَ الرَّحْمٰنِ فَتَكُونَ لِلشَّيْطَانِ وَلِيًّا ﴿٤٥﴾ قَالَ اَرَاغِبٌ اَنْتَ
عَنْ اٰلِهَتٖي يَٓا اِبْرٰهٖيمُۚ لَئِنْ لَمْ تَنْتَهِ لَاَرْجُمَنَّكَ وَاهْجُرْنٖي مَلِيًّا ﴿٤٦﴾
قَالَ سَلَامٌ عَلَيْكَۚ سَاَسْتَغْفِرُ لَكَ رَبّٖيۜ اِنَّهُ كَانَ بٖي حَفِيًّا ﴿٤٧﴾
وَاَعْتَزِلُكُمْ وَمَا تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ وَاَدْعُوا رَبّٖيۘ عَسٰٓى
اَلَّٓا اَكُونَ بِدُعَٓاءِ رَبّٖي شَقِيًّا ﴿٤٨﴾ فَلَمَّا اعْتَزَلَهُمْ وَمَا يَعْبُدُونَ
مِنْ دُونِ اللّٰهِۙ وَهَبْنَا لَهُٓ اِسْحٰقَ وَيَعْقُوبَۜ وَكُلًّا جَعَلْنَا نَبِيًّا ﴿٤٩﴾ وَوَهَبْنَا
لَهُمْ مِنْ رَحْمَتِنَا وَجَعَلْنَا لَهُمْ لِسَانَ صِدْقٍ عَلِيًّا ﴿٥٠﴾ وَاذْكُرْ
فِي الْكِتَابِ مُوسٰٓىۘ اِنَّهُ كَانَ مُخْلَصًا وَكَانَ رَسُولًا نَبِيًّا ﴿٥١﴾

**39.** Der heqê wê roja ku dê karên wan li ser qerarekî bê girêdan û qedandin wan hişyar bike! Ew di xefletê de ne. Ew îmân naynin.

**40.** Bêguman em ê bibin warisê erdê û tiştên li ser rûyê wê. (Wê herkes bimire û tiştên ku me daye wan wê dîsa ji me re bimîne) û wê li me bên vegerandin.

**41.** Di Kitêbê de Îbrahîm jî bi bîr bîne! Ew pêxemberekî rast/siddîq bû.

**42.** Wê dema ku Îbrahîm ji bavê xwe re got: "Bavê min! Çima tu îbadetê tiştên wisan dikî ku ew ne dibihîzin û ne dibînin û qet tu feyda wan jî ji te re tune?"

**43.** "Bavê min! Bi rastî ilmê ku ji te re nehatîye ji min re hatîye. Êdî tu jî bide pey min da ku ez te bigihînim ser rêya rast."

**44.** "Bavê min! Ji şeytan re perestî/evdîtî neke! Bi rastî şeytan ji Rahmân re bû serxwerabûyî/bû îsyankar."

**45.** "Bavê min! Ez ji ber vê ditirsim ku ezabê Rahmân bigihîje te û tu bibî ji dostên şeytan."

**46.** (Bavê wî) got: "Ma tu ji îlâhên min rû vedigerînî, ya Îbrahîm? Eger tu (vê halê xwe) neterikînî ez ê te bidim ber keviran/birecimînim. Tu demeke dirêj ji min dûr be."

**47.** Got: "Silav li ser te be! Ez ê ji bo te ji Rabbê xwe îstîxfarê/efûkirinê daxwaz bikim. Bêguman ew, ji min re (ew, yê ku birehm û lûtifkar e û li min xweyîtî dike) Hafî ye."
(Bnr. 9/Tewbe, 114)

**48.** "Ez we û ew ên ku hûn ji xeynî Allah dûayê wan dikin diterikînim û ji we vediqetim. Ez bi tenê ji Rabbê xwe re dûa dikim. Hêvî heye ku ez bi dûakirina Rabbê xwe bedbext nabim. (Wê Rabbê min îcabetî dûayê min bike.)"

**49.** Dema ku (Îbrahîm) wan û ew ên ji xeynî Allah dûayê wan dikirin terikand û ji wan veqetîya, me jî Îshaq û Yaqûb danê. Me hemûyan kir pêxember.

(Pejirandina tewhîdê û dûrketina/beraeta ji wan muşrîkên ku tewhîdê qebûl nakin, amelekî wisan e ku Allah (ac) herî zêde jê razî ye. Amelên bi vê awayê mezin in, xelata/mikafata wan jî pirzêde ye. Ji bo Îbrahîm (as) hesreta zarokan jî piştî ku beraeta xwe ji şirkê û ji muşrîkan îlan kir û ew bixwe ji wan veqetîya xelas bibû.)

**50.** Me ji rahmeta xwe (qencîyan/lutfan) da wan. Û me zimanekî/zarekî dirûstî ya herî bilind da wan. (Rastgo ne û ji terefê însanan ve jî bi rastî/bi pesin tên bîranîn.)

**51.** Di Kitêbê de Mûsa jî bi bîr bîne! Bêguman ew, nebîyekî rasûl û muxlas/pir bi îxlâs/pakkirî bû.

وَنَادَيْنَاهُ مِنْ جَانِبِ الطُّورِ الْاَيْمَنِ وَقَرَّبْنَاهُ نَجِيًّا ﴿٥٢﴾ وَوَهَبْنَا لَهُ
مِنْ رَحْمَتِنَٓا اَخَاهُ هٰرُونَ نَبِيًّا ﴿٥٣﴾ وَاذْكُرْ فِي الْكِتَابِ اِسْمٰعِيلَ
اِنَّهُ كَانَ صَادِقَ الْوَعْدِ وَكَانَ رَسُولًا نَبِيًّا ﴿٥٤﴾ وَكَانَ يَأْمُرُ اَهْلَهُ
بِالصَّلٰوةِ وَالزَّكٰوةِ وَكَانَ عِنْدَ رَبِّهِ مَرْضِيًّا ﴿٥٥﴾ وَاذْكُرْ فِي الْكِتَابِ
اِدْرِيسَ اِنَّهُ كَانَ صِدِّيقًا نَبِيًّا ﴿٥٦﴾ وَرَفَعْنَاهُ مَكَانًا عَلِيًّا ﴿٥٧﴾ اُولٰٓئِكَ
الَّذِينَ اَنْعَمَ اللّٰهُ عَلَيْهِمْ مِنَ النَّبِيِّنَ مِنْ ذُرِّيَّةِ اٰدَمَ وَمِمَّنْ حَمَلْنَا
مَعَ نُوحٍ وَمِنْ ذُرِّيَّةِ اِبْرٰهِيمَ وَاِسْرَٓائِلَ وَمِمَّنْ هَدَيْنَا وَاجْتَبَيْنَا
اِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُ الرَّحْمٰنِ خَرُّوا سُجَّدًا وَبُكِيًّا ﴿٥٨﴾
فَخَلَفَ مِنْ بَعْدِهِمْ خَلْفٌ اَضَاعُوا الصَّلٰوةَ وَاتَّبَعُوا الشَّهَوَاتِ
فَسَوْفَ يَلْقَوْنَ غَيًّا ﴿٥٩﴾ اِلَّا مَنْ تَابَ وَاٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا فَاُولٰٓئِكَ
يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ وَلَا يُظْلَمُونَ شَيْـًٔا ﴿٦٠﴾ جَنَّاتِ عَدْنٍ الَّتِي وَعَدَ
الرَّحْمٰنُ عِبَادَهُ بِالْغَيْبِ اِنَّهُ كَانَ وَعْدُهُ مَاْتِيًّا ﴿٦١﴾ لَا يَسْمَعُونَ فِيهَا
لَغْوًا اِلَّا سَلَامًا وَلَهُمْ رِزْقُهُمْ فِيهَا بُكْرَةً وَعَشِيًّا ﴿٦٢﴾ تِلْكَ الْجَنَّةُ
الَّتِي نُورِثُ مِنْ عِبَادِنَا مَنْ كَانَ تَقِيًّا ﴿٦٣﴾ وَمَا نَتَنَزَّلُ اِلَّا بِاَمْرِ رَبِّكَ
لَهُ مَا بَيْنَ اَيْدِينَا وَمَا خَلْفَنَا وَمَا بَيْنَ ذٰلِكَ وَمَا كَانَ رَبُّكَ نَسِيًّا ﴿٦٤﴾




**52.** Ji alîyê rastê ya Tûrê ve me deng lê kir û ji bo axaftineke bi dizî, me ew nêz kir.

**53.** Me ji rahmeta xwe birayê wî Hârûn jî bi pêxembertî ew xelat kir.

**54.** Di Kitêbê de Îsmaîl jî bi bîr bîne! Ew, di soza xwe de sadiq û nebîyekî rasûl bû.

**55.** Emrê nimêj û zekâtê li ehlê xwe dikir. Ew li cem Rabbê xwe evdekî jêrazîbûyî bû.

**56.** Di Kitêbê de Idrîs jî bi bîr bîne! Ew pêxemberekî rast/siddîq bû.

**57.** Me ew hildabû meqamekî berz/bilind.

**58.** Evana, ew in ku Allah nîmet daye wan; pêxemberên ji zurîyeta Âdem in û yên me bi Nûh re (di keştîyê de) kişandine û ji zurîyeta Îbrahîm û Îsraîl (Yaqûb) in û me ew hilbijartine û gihîştandine hîdayetê ne. Dema ku ji wan re ayetên Rahmân têne xwendin bi kelegirî diçin secdê.

**59.** Paşê di pey wan de nesleke wisan hat ku nimêj zîyan/îhmal kirin û dane pey şehewatên xwe. Ew ên hanê wê leqayî xayy (cureya ezabekî taybet) bibin.

**60.** Lê ew ên tobe dikin û îmân anîne û amelên salih kirine ne têde. Wê ew bikevin cennetê û qet tu neheqî li wan neyê kirin.

**61.** (Ew) cennetên Adn ku; Rahmân ew bi xiyabî ji evdên xwe re wead kiriye. Bêguman dê weada wî were cih.

**62.** Ew li wê derê peyva batil nabihîzin. (Tiştê ku seh dikin) bi tenê silav e. Û ji wan re sibeh û êvar rizqê wan heye.

**63.** Ew cenneta ku em ê bidin evdên xwe yên xwedî teqwa ev e.

**64.** Em enceq bi emrê/bi destûra Rabbê te dadikevin. Tiştên ku li pêşîya me û li dûv me û di navbera herduyan de hene hemû aîdê wî ne. Rabbê te ne jibîrker e.

(Piştî ku Rasûlullah (ass) ji Cibrîl (as) vê pirsê kir: "Tu çima zehftir serîya li me nadî?" ev ayet nazil bûne. (Buxarî, 4731; Tirmizî, 3158)

رَبُّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا فَاعْبُدْهُ وَاصْطَبِرْ لِعِبَادَتِهٖۜ
هَلْ تَعْلَمُ لَهُ سَمِيًّا ﴿٦٥﴾ وَيَقُولُ الْاِنْسَانُ ءَاِذَا مَا مِتُّ لَسَوْفَ
اُخْرَجُ حَيًّا ﴿٦٦﴾ اَوَلَا يَذْكُرُ الْاِنْسَانُ اَنَّا خَلَقْنَاهُ مِنْ قَبْلُ وَلَمْ
يَكُ شَيْـًٔا ﴿٦٧﴾ فَوَرَبِّكَ لَنَحْشُرَنَّهُمْ وَالشَّيَاطِينَ ثُمَّ لَنُحْضِرَنَّهُمْ
حَوْلَ جَهَنَّمَ جِثِيًّاۚ ﴿٦٨﴾ ثُمَّ لَنَنْزِعَنَّ مِنْ كُلِّ شِيعَةٍ اَيُّهُمْ اَشَدُّ
عَلَى الرَّحْمٰنِ عِتِيًّاۚ ﴿٦٩﴾ ثُمَّ لَنَحْنُ اَعْلَمُ بِالَّذِينَ هُمْ اَوْلٰى بِهَا
صِلِيًّا ﴿٧٠﴾ وَاِنْ مِنْكُمْ اِلَّا وَارِدُهَاۚ كَانَ عَلٰى رَبِّكَ حَتْمًا
مَقْضِيًّاۚ ﴿٧١﴾ ثُمَّ نُنَجِّي الَّذِينَ اتَّقَوْا وَنَذَرُ الظَّالِمِينَ فِيهَا
جِثِيًّا ﴿٧٢﴾ وَاِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ قَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا
لِلَّذِينَ اٰمَنُوٓاۙ اَيُّ الْفَرِيقَيْنِ خَيْرٌ مَقَامًا وَاَحْسَنُ نَدِيًّا ﴿٧٣﴾ وَكَمْ
اَهْلَكْنَا قَبْلَهُمْ مِنْ قَرْنٍ هُمْ اَحْسَنُ اَثَاثًا وَرِءْيًا ﴿٧٤﴾ قُلْ مَنْ كَانَ
فِي الضَّلَالَةِ فَلْيَمْدُدْ لَهُ الرَّحْمٰنُ مَدًّاۚ حَتّٰٓى اِذَا رَاَوْا مَا يُوعَدُونَ
اِمَّا الْعَذَابَ وَاِمَّا السَّاعَةَۜ فَسَيَعْلَمُونَ مَنْ هُوَ شَرٌّ مَكَانًا
وَاَضْعَفُ جُنْدًا ﴿٧٥﴾ وَيَزِيدُ اللّٰهُ الَّذِينَ اهْتَدَوْا هُدًىۜ
وَالْبَاقِيَاتُ الصَّالِحَاتُ خَيْرٌ عِنْدَ رَبِّكَ ثَوَابًا وَخَيْرٌ مَرَدًّا ﴿٧٦﴾

**65.** Rabbê erd û esmanan û hemû tiştên di navbera wan de ye. Ji wî re perestî/evdîtî bike û sebir bike. Erê ma qet tu bi yekî wekî wî/yekî ku bi navê wî tê bîranîn nas dikî/dizanî?

**66.** (Digel ku qudreta Allah bêsînor e) însan wiha dibêje: “Dema ku ez bimirim, ma qey rast e ku ez ê carekî din bême vejandin û deranîn?”

**67.** Qey însan nafikire? Digel ku ew berê de ne tu tişt bû, paşê me wî xuliqand.

**68.** Sond bi Rabbê te ku em ê wan û şeytanan li hev bicivînin û muheqeq em ê wan li ser çokên xwe li dora cehennemê bidin amadekirin.

**69.** Paşê ji her komî, yên li dij Rahmân herî zêde har bûne em ê wan biveqetînin.

**70.** Paşê helbet em herî çêtir dizanin kî layiqê wê (cehennemê) ye.

**71.** Ji we hemû kes biteqezî dê bê serê wê (cehennem ê). Ev ji bo Rabbê te hukmekî vebirî ye.

**72.** Piştre em wan ên xwe (ji Allah) diparêzin xelas dikin. Û em wan zaliman jî li wîr wek çokdayî dihêlin.

**73.** Dema ayetên me yên eşkere ji wan re tê xwendin ew ên kafir ji mumînan re wiha dibêjin: “Ji herdu civatan rewşa kîjanî hêj bixêrtir û derdora wî/civata wî xweşiktir e?”

**74.** Lê ew qewmên ku me berîya wan helak kirine, hem bi hebûna xwe û hem jî bi dîtbarîya xwe ji wan xweşiktir bûn.

**75.** Bibêje: “Kî di xerifîyê de be û Rahmân muhleta wî heta heta dirêj jî bike... Dema wê ezaba ji wan re hatîye weadkirin an jî qiyametê bibînin, wê bi yeqînî fêm bikin ka rewşa kî herî xerab e û ji hêla leşkerî ve/ji hêla alîkaran ve herî qelstir e wê baş bizanibin.

**76.** Allah, hîdayeta ehlê hîdayetê zêdetir dike. Amelên salih ên mayînde ew in ku li cem Rabbê te bi mukâfat û bi aqûbetî herî bixêrtir e.

اَفَرَاَيْتَ الَّذ۪ي كَفَرَ بِاٰيَاتِنَا وَقَالَ لَاُو۫تَيَنَّ مَالًا وَوَلَدًاۜ ﴿٧٧﴾ اَطَّلَعَ
الْغَيْبَ اَمِ اتَّخَذَ عِنْدَ الرَّحْمٰنِ عَهْدًاۙ ﴿٧٨﴾ كَلَّاۜ سَنَكْتُبُ
مَا يَقُولُ وَنَمُدُّ لَهُ مِنَ الْعَذَابِ مَدًّاۙ ﴿٧٩﴾ وَنَرِثُهُ مَا يَقُولُ وَيَأْت۪ينَا
فَرْدًا ﴿٨٠﴾ وَاتَّخَذُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ اٰلِهَةً لِيَكُونُوا لَهُمْ عِزًّاۙ ﴿٨١﴾
كَلَّاۜ سَيَكْفُرُونَ بِعِبَادَتِهِمْ وَيَكُونُونَ عَلَيْهِمْ ضِدًّاۚ ﴿٨٢﴾
اَلَمْ تَرَ اَنَّٓا اَرْسَلْنَا الشَّيَاط۪ينَ عَلَى الْكَافِر۪ينَ تَؤُزُّهُمْ
اَزًّاۙ ﴿٨٣﴾ فَلَا تَعْجَلْ عَلَيْهِمْۜ اِنَّمَا نَعُدُّ لَهُمْ عَدًّاۚ ﴿٨٤﴾ يَوْمَ
نَحْشُرُ الْمُتَّق۪ينَ اِلَى الرَّحْمٰنِ وَفْدًاۙ ﴿٨٥﴾ وَنَسُوقُ الْمُجْرِم۪ينَ
اِلٰى جَهَنَّمَ وِرْدًاۢ ﴿٨٦﴾ لَا يَمْلِكُونَ الشَّفَاعَةَ اِلَّا مَنِ اتَّخَذَ
عِنْدَ الرَّحْمٰنِ عَهْدًاۢ ﴿٨٧﴾ وَقَالُوا اتَّخَذَ الرَّحْمٰنُ وَلَدًاۜ ﴿٨٨﴾
لَقَدْ جِئْتُمْ شَيْـًٔا اِدًّاۙ ﴿٨٩﴾ تَكَادُ السَّمٰوَاتُ يَتَفَطَّرْنَ مِنْهُ وَتَنْشَقُّ
الْاَرْضُ وَتَخِرُّ الْجِبَالُ هَدًّاۙ ﴿٩٠﴾ اَنْ دَعَوْا لِلرَّحْمٰنِ وَلَدًاۚ ﴿٩١﴾
وَمَا يَنْبَغ۪ي لِلرَّحْمٰنِ اَنْ يَتَّخِذَ وَلَدًاۜ ﴿٩٢﴾ اِنْ كُلُّ
مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ اِلَّٓا اٰتِي الرَّحْمٰنِ عَبْدًاۜ ﴿٩٣﴾ لَقَدْ
اَحْصٰيهُمْ وَعَدَّهُمْ عَدًّاۜ ﴿٩٤﴾ وَكُلُّهُمْ اٰت۪يهِ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ فَرْدًا ﴿٩٥﴾

**77.** Te wî yê ku ayetên me înkar dikir û digot: “Teqez wê mal û ewlad ji min re bên dayîn” dît?

**78.** Gelo ew agahdarê xeybê bû an li cem Rahmân jê re sozekî (hatîye dayîn) heye?

**79.** Nexêr! Em ê gotinên wî binivîsînin û em ê ezabê wî her dirêj bikin.

**80.** Ji tiştê (mal û ewlad) ên ew dibêje re em ê bibin waris û wê ew bi serê xwe tenê were bal me.

**81.** Ji bo ku ji wan re bibe rûmet/serdestî/çavkanîya hêzê, ji xeynî Allah ji xwe re îlâhan girtin!

**82.** Nexêr! (Roja qiyametê) wê îbadetên wan înkar bikin û wê li hemberî wan (wek dijmin) cih bigirin.

(Ji bo têgeha Îlâh û îzaha Kelîmeya Tewhîdê: Bnr. 21/Enbîya, 25)

**83.** Ma qey te nedît ku me şeytanan di ser wan de şandin da ku wan (arasteyî şirkê û îsyana ji Allah re) fît bikin û tevbigerînin?

**84.** Ji bo wan nelezîne/acele neke! Em ji wan re (rojên wan) yek bi yek dijmêrin.

**85.** Roja ku em Mutteqîyan qefle bi qefle di hizûra Rahmân de dicivînin (heye)!

**86.** Em ê gunehkarên mucrîm bi tî bûn bal bi cehennemê ve bajon.

**87.** Ji xeynî ew ên ji bal Rahmân soz/ehd girtine tu kes nikare rayeya şefaetê di destê xwe de bigire.

(Ji bo têgeha Şefaetê ya di Qur'anê de bnr. 43/Zuxruf, 86)

**88.** Gotin: “Rahmân ji xwe re zarok girtîye.”

**89.** Sond be we gotineke pir kirêt û adîyane got.

**90.** Hindik mabû ku (ji ber erjengîya vê gotinê) esman şeq bibûna û erd biqelişîya û çiyan biherifîya/yeksan bibûna.

**91.** Ji ber ku zarok ji Rahmân re lê anîbûn.

**92.** Lê zarok girtin ji Rahmân re nabe/lê nayê!

**93.** Hemû kesên li erd û esmanan hene, dê bitenê wek bende/wek evd werin hizûra Rahmân.

**94.** Sond be, wan hemûyan bi tevahî û yek bi yek jimartîye û dorpêç kiriye.

**95.** Û ew hemû roja qiyametê wê yek bi yek bêne hizûra wî.

**96.** Ew ên îmân anîne û amelên salih kirine, wê Rahmân hezkirinê bike (qelbê wan).

(Rasûlullah (ass) wiha qotîye: "Dema ku Allah hez evdekî xwe dike gazî Cibrîl (as) dike û wiha dibêje: 'Allah (ac) hez filan kesî dike, tu jî hez wî bike.' Cibrîl (as) hez wî kesî dike û ji ehlê semayê re jî nîda dike û dibêje: 'Allah (ac) hez filan kesî dike hûn jî hez wî bikin.' Ew jî hez wî kesî dikin û ji bo wî pejirînek dikeve qelbê ehlê ser rûyê erdê/însanan." (Buxarî, 3037; Muslîm, 2637))




**97.** Ji bo ku tu mizgînê bidî Mutteqîyan û qewmekî rikdar hişyar bikî me ev (Qur'an) bi zimanê te hêsan kir.

(Ji bo meqseda nazilkirina Kitêbê bnr. 4/Nîsa, 105.)

**98.** Me berîya wan gelek qewman helak kirin. Erê ma tu pêjna kesekî ji wan dikî an jî tu axaftina wan ya ku di navbera xwe de bi dizî dikirin, dibihîzî?

## 20. SÛREYA TÂ-HÂ

*(Sûreya Tâ-Hâ, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sed û sî û pênc (135) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya bîstemîn e. Ji ber ku bi herfên Tâ û Hâ dest pê kiriye wek sûreya Tâ-Hâ hatîye binav kirin. Sûre, di mayîneya xwe ya paş de behsa Mûsa û Harûn û qiseya derketina Cihûyan ya ji Misrê û şîret û hişyarîyên der heqê axîretê de dike.*

*(Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim).*

**1.** Tâ. Hâ.

**2.** Ev Qur'an ne ji bo ku tu di tengezarîyê de bimînî me ji te re daxistîye.

(Ji ber ku muşrîkan îmân nedianîn Rasûlullah (ass) pir xemgîn dibû û diltengî dikişand. (18/Kehf, 6). Allah (ac), wekî ku di van ayetan de diyar kiriye li ber dilê Rasûlullah (ass) daye: Xemgîn nebe (35/Fâtir, 8), tewekkulê Allah bike (9/Tewbe, 129), di îmân neanîna wan de qet tu mesûlîyeta pêxember tune (2/Baqara, 272), ji bo Nebî alîkarîya Allah ya li ser mumînan têr bes e (8/Enfâl, 62))

**3.** (Berevajî, me daxistîye da ku) ji bo ew ên ji Allah ditirsin re bibe şîret/bibîrxistin.

إِنَّ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ سَيَجْعَلُ لَهُمُ الرَّحْمٰنُ وُدًّا ﴿٩٦﴾
فَاِنَّمَا يَسَّرْنَاهُ بِلِسَانِكَ لِتُبَشِّرَ بِهِ الْمُتَّق۪ينَ وَتُنْذِرَ بِه۪ قَوْمًا لُدًّا ﴿٩٧﴾ وَكَمْ
اَهْلَكْنَا قَبْلَهُمْ مِنْ قَرْنٍ هَلْ تُحِسُّ مِنْهُمْ مِنْ اَحَدٍ اَوْ تَسْمَعُ لَهُمْ رِكْزًا ﴿٩٨﴾

سُورَةُ طٰهٰ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ مِائَةٌ وَخَمْسٌ وَثَلَاثُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
طٰهٰ ﴿١﴾ مَٓا اَنْزَلْنَا عَلَيْكَ الْقُرْاٰنَ لِتَشْقٰى ﴿٢﴾ اِلَّا تَذْكِرَةً لِمَنْ
يَخْشٰى ﴿٣﴾ تَنْز۪يلًا مِمَّنْ خَلَقَ الْاَرْضَ وَالسَّمٰوَاتِ الْعُلٰى ﴿٤﴾
اَلرَّحْمٰنُ عَلَى الْعَرْشِ اسْتَوٰى ﴿٥﴾ لَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ
وَمَا فِي الْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا وَمَا تَحْتَ الثَّرٰى ﴿٦﴾ وَاِنْ تَجْهَرْ
بِالْقَوْلِ فَاِنَّهُ يَعْلَمُ السِّرَّ وَاَخْفٰى ﴿٧﴾ اَللّٰهُ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ
لَهُ الْاَسْمَٓاءُ الْحُسْنٰى ﴿٨﴾ وَهَلْ اَتٰيكَ حَد۪يثُ مُوسٰى ﴿٩﴾
اِذْ رَاٰ نَارًا فَقَالَ لِاَهْلِهِ امْكُثُٓوا اِنّ۪ٓي اٰنَسْتُ نَارًا لَعَلّ۪ٓي اٰت۪يكُمْ مِنْهَا
بِقَبَسٍ اَوْ اَجِدُ عَلَى النَّارِ هُدًى ﴿١٠﴾ فَلَمَّٓا اَتٰيهَا نُودِيَ يَا مُوسٰى ﴿١١﴾
اِنّ۪ٓي اَنَا رَبُّكَ فَاخْلَعْ نَعْلَيْكَ اِنَّكَ بِالْوَادِ الْمُقَدَّسِ طُوًى ﴿١٢﴾

**4.** Ew, ji alîyê xaliqê erd û esmanên bilind ve hatîye daxistin.

**5.** Rahmân îstîwayê erşê kir.

**6.** Hemû tiştên li erd û esmanan û di navbera herduyan de û (tiştên) di bin axa kamdar/hêwî/ birewa de hene aîdê wî ne.

**7.** Eger tu gotinê bi eşkerehî bêjî jî (nebêjî jî ferq nake). Ew (Allah) ya ku sir e (tiştê di dilê te de) û ya ku jê veşarîtir e (hêj ne ketîye dilê te) jî dizane.

**8.** Allah... Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. Esmayên/Navên herî xweşik bi tevahî aîdê wî ne.

**9.** Agahîya Mûsa ji te re hat?

**10.** Bi bîr bîne, dema Mûsa agirek dîtibû û ji ehlê xwe re wiha gotibû: "Li vir bimînin! Min agirek dît. Ez hêvî dikim ku ji wê re perengekî/bizotekî bînim an jî li cem wê rehberekî (ku rê nîşan bide) bibînim."

**11.** Dema ku gihîşte wê derê lê wiha hate gazîkirin: "Ya Mûsa!"

**12.** "Bêguman ez, (erê) ez Rabbê te me. Solên xwe derxîne. Lewre tu li newala pîroz, li Tuwa yî."

وَاَنَا اخْتَرْتُكَ فَاسْتَمِعْ لِمَا يُوحٰى ﴿١٣﴾ اِنَّن۪ٓي اَنَا اللّٰهُ لَٓا اِلٰهَ اِلَّٓا اَنَا
فَاعْبُدْن۪يۙ وَاَقِمِ الصَّلٰوةَ لِذِكْر۪ي ﴿١٤﴾ اِنَّ السَّاعَةَ اٰتِيَةٌ اَكَادُ
اُخْف۪يهَا لِتُجْزٰى كُلُّ نَفْسٍ بِمَا تَسْعٰى ﴿١٥﴾ فَلَا يَصُدَّنَّكَ عَنْهَا
مَنْ لَا يُؤْمِنُ بِهَا وَاتَّبَعَ هَوٰيهُ فَتَرْدٰى ﴿١٦﴾ وَمَا تِلْكَ بِيَم۪ينِكَ
يَا مُوسٰى ﴿١٧﴾ قَالَ هِيَ عَصَايَۚ اَتَوَكَّؤُ۬ا عَلَيْهَا وَاَهُشُّ
بِهَا عَلٰى غَنَم۪ي وَلِيَ ف۪يهَا مَاٰرِبُ اُخْرٰى ﴿١٨﴾ قَالَ اَلْقِهَا
يَا مُوسٰى ﴿١٩﴾ فَاَلْقٰيهَا فَاِذَا هِيَ حَيَّةٌ تَسْعٰى ﴿٢٠﴾ قَالَ خُذْهَا
وَلَا تَخَفْ قف سَنُع۪يدُهَا س۪يرَتَهَا الْاُو۫لٰى ﴿٢١﴾ وَاضْمُمْ يَدَكَ
اِلٰى جَنَاحِكَ تَخْرُجْ بَيْضَٓاءَ مِنْ غَيْرِ سُٓوءٍ اٰيَةً اُخْرٰىۙ ﴿٢٢﴾
لِنُرِيَكَ مِنْ اٰيَاتِنَا الْكُبْرٰىۚ ﴿٢٣﴾ اِذْهَبْ اِلٰى فِرْعَوْنَ اِنَّهُ طَغٰىۚ ﴿٢٤﴾
قَالَ رَبِّ اشْرَحْ ل۪ي صَدْر۪يۙ ﴿٢٥﴾ وَيَسِّرْ ل۪ٓي اَمْر۪يۙ ﴿٢٦﴾ وَاحْلُلْ عُقْدَةً
مِنْ لِسَان۪يۙ ﴿٢٧﴾ يَفْقَهُوا قَوْل۪يۖ ﴿٢٨﴾ وَاجْعَلْ ل۪ي وَز۪يرًا مِنْ اَهْل۪يۙ ﴿٢٩﴾
هٰرُونَ اَخِيۚ ﴿٣٠﴾ اُشْدُدْ بِه۪ٓ اَزْر۪يۙ ﴿٣١﴾ وَاَشْرِكْهُ ف۪ٓي اَمْر۪يۙ ﴿٣٢﴾
كَيْ نُسَبِّحَكَ كَث۪يرًاۙ ﴿٣٣﴾ وَنَذْكُرَكَ كَث۪يرًاۜ ﴿٣٤﴾ اِنَّكَ كُنْتَ بِنَا بَص۪يرًا ﴿٣٥﴾
قَالَ قَدْ اُو۫ت۪يتَ سُؤْلَكَ يَا مُوسٰى ﴿٣٦﴾ وَلَقَدْ مَنَنَّا عَلَيْكَ مَرَّةً اُخْرٰىۙ ﴿٣٧﴾

**13.** “Min tu hilbijartî. Li wehîya ku ji te re hatîye guhdar be.”
**14.** “Bêguman ez, (erê) ez Allah im. Ji min pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. Ji min re îbadetê bike. Ji bo bîranîna/zikirkirina min nimêj bike.”
**15.** “Wê qiyamet were/rabe. Ji bo ku her nefs berginda/muqabela amelên xwe bistîne hema hema (ez ê wê ji xwe jî) biveşêrim.”
**16.** “Nebe ew ê ku îman pê neanîye û dide pey hewayê xwe te jî (ji îman anîna wê) nede paş. Ne xwe tu yê helak bibî.”
**17.** “Ew ê di destê te yê rastê de çi ye ya Mûsa?”
**18.** Got: “Ew gopalê min e. Ez pala xwe didimê û ji pezên xwe re pelên dara pê diweşînim û gelek hewcehîyên min ên din jî pê hene.”
**19.** Got: “Wî bavêje ya Mûsa!”
**20.** Wî jî avêt. (Lê çi bibîne) ew, bû marek û xwe tev dide.
**21.** Got: “Rahêje wî! Netirse, em ê wî vegerînin ser rewşa wî yê berê.”
**22.** “Destê xwe bêxe binçenga xwe! Bê qisûr/bê nexweşî wê sipspî/çîlspî derkeve. (Ev jî) ayetekî/mûcîzeyekî din e.”
**23.** (Wisa bike û encamê bibîne da ku) em ji ayetên/mucîzeyên xwe yên mezin yekî nîşanî te bidin.”
**24.** “Here cem Firewn. Lewre ew bi taxûtî ji hedê xwe borî ye.
**25.** (Mûsa) got: “Rabbê min! Tu firehî/Înşîrâh bide singa min.
**26.** “Karê min hêsan bike.”
**27-28.** “Benda/girêya zimanê min vebike ku; ji gotinên min fêm bikin.”
**29.** “Ji malbata min wezîrekî/alîkarekî bide min.”
**30.** “Birayê min Hârûn.”
**31.** “Bi wî, hêza min qewî bike.
**32.** “Wî di wezîfa (daweta) min de bike şirîk.”
**33.** “Da ku em te zehf tesbîh bikin.”
**34.** “Pir zikir bikin.”
**35.** “Bêguman jixwe tu me dibînî.”
**36.** Got: “Tiştên ku te xwestinji te re hatin dayîn ya Mûsa!”
**37.** “Sond be, me carekî din jî qencî bi te kiribû.”

**38.** “Bi bîr bîne, (ji bo xelasîya te) wehîya ku hewce dikir me li dêya te wehîy kiribû.”
**39.** “(Me wiha wehîy kiribû: wî) bixe tabûtê/sindoqê û (paşê) bavêje çem. Bila av wî bavêje/derêxe beravê (qeraxê). Bila yekî hem dijminê wî û hem dijminê min wî bigire. Da ku tu di bin çavdêrîya min de perwerde bibî min ji cem xwe hezkirinek avête ser te (kesê ku te bibîne wê hez te bike).”
**40.** “Bi bîr bîne, dema xuşka te dimeşîya û wiha digot: ‘Ma ez yekî ku şîr bidê û baş li wî binêre nîşanî we bidim?’ Ji bo ku çavronî/dilxweş bibe û xemgîn nebe me tu li dayîka te vegerand. Te mirovek kuştibû û me te ji xema wê (kuştinê) xelas kir û me te bi fitneyan (îmtîhanan) îmtîhan kiribû. Tu di nava qewmê Medyenê de bi salan mayî û paşê bi qederekî (diyarkirî) tu hatî vê derê (Misrê) ya Mûsa!”
**41.** “Min te ji bo xwe (ji bo ku tu dawa rîsaletê hilgirî) hilbijart û gihandîye.
**42.** “Tu û birayê xwe bi ayetên min herin (cem Firewn) û zikirkirina min de sistîyê nekin.”
(Di têkoşîna pergalên Firewnî de ji bo muwahhîdan çavkanîya hêzê zikra Allah e (ac). Lewre kî Allah (ac) bi bîr bîne Allah (ac) jî wî kesî bi bîr tîne.)
Ew kesê navê wî di Mele-î A’lâ de bi pesindan derbas dibe herî hêzdarê li ser rûyê erdê ye. Lewre li pişta wî artêşên nayê dîtîn ên Mele-î A’lâ hene. Li hember gefên/tehdîdên Fîrewnan bîranîna Allah, xwedîyê bandoreke wisane ku dilan aramdar dike (13/Re’d, 28) û lingan/pîyan sabît digire (8/Enfâl, 45) .
**43.** “Hûn herdu herin cem Firewn; lewre ew pir har/hêç bûye.”
**44.** “Jê re gotinên nerm bêjin. Hêvî heye ku şîret bigire an jî bitirse.”
(Ji bo gotina qewlê leyyîn/peyva binermî ji Firewn re bnr. 79/Nâziât, 17-19.)
**45.** Gotin: “Rabbê me! Bi rastî em ditirsin ku zêde pê de here û tuxyana xwe zêde bike.”
**46.** Got: “Netirsin! Bêguman ez bi we re me; dibînim û dibihîzim.”
**47.** “Herin cem wî û bibêjin: ‘Bêguman em, qasidê Rabbê te ne. Benî Îsraîl bi me re bişîne û êdî ezab li wan neke! Muheqeq em ji Rabbê te bi ayetan/bi mucîzeya hatin. Silav li ser wan ên ku tabiê hîdayetê ne.’ ”

اِذْ اَوْحَيْنَٓا اِلٰٓى اُمِّكَ مَا يُوحٰىۙ ﴿٣٨﴾ اَنِ اقْذِف۪يهِ فِي التَّابُوتِ
فَاقْذِف۪يهِ فِي الْيَمِّ فَلْيُلْقِهِ الْيَمُّ بِالسَّاحِلِ يَأْخُذْهُ عَدُوٌّ ل۪ي وَعَدُوٌّ
لَهُۜ وَاَلْقَيْتُ عَلَيْكَ مَحَبَّةً مِنّ۪يۚ وَلِتُصْنَعَ عَلٰى عَيْن۪يۢ ﴿٣٩﴾ اِذْ تَمْش۪ٓي
اُخْتُكَ فَتَقُولُ هَلْ اَدُلُّكُمْ عَلٰى مَنْ يَكْفُلُهُۜ فَرَجَعْنَاكَ
اِلٰٓى اُمِّكَ كَيْ تَقَرَّ عَيْنُهَا وَلَا تَحْزَنَۜ وَقَتَلْتَ نَفْسًا فَنَجَّيْنَاكَ
مِنَ الْغَمِّ وَفَتَنَّاكَ فُتُونًاۜ فَلَبِثْتَ سِن۪ينَ ف۪ٓي اَهْلِ مَدْيَنَ ثُمَّ جِئْتَ
عَلٰى قَدَرٍ يَا مُوسٰى ﴿٤٠﴾ وَاصْطَنَعْتُكَ لِنَفْس۪يۚ ﴿٤١﴾ اِذْهَبْ اَنْتَ
وَاَخُوكَ بِاٰيَات۪ي وَلَا تَنِيَا ف۪ي ذِكْر۪يۚ ﴿٤٢﴾ اِذْهَبَٓا اِلٰى فِرْعَوْنَ اِنَّهُ طَغٰىۚ ﴿٤٣﴾
فَقُولَا لَهُ قَوْلًا لَيِّنًا لَعَلَّهُ يَتَذَكَّرُ اَوْ يَخْشٰى ﴿٤٤﴾ قَالَا رَبَّنَٓا اِنَّنَا نَخَافُ
اَنْ يَفْرُطَ عَلَيْنَٓا اَوْ اَنْ يَطْغٰى ﴿٤٥﴾ قَالَ لَا تَخَافَٓا اِنَّن۪ي مَعَكُمَٓا اَسْمَعُ
وَاَرٰى ﴿٤٦﴾ فَأْتِيَاهُ فَقُولَٓا اِنَّا رَسُولَا رَبِّكَ فَاَرْسِلْ مَعَنَا بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَ
وَلَا تُعَذِّبْهُمْۜ قَدْ جِئْنَاكَ بِاٰيَةٍ مِنْ رَبِّكَۜ وَالسَّلَامُ عَلٰى مَنِ اتَّبَعَ
الْهُدٰى ﴿٤٧﴾ اِنَّا قَدْ اُو۫حِيَ اِلَيْنَٓا اَنَّ الْعَذَابَ عَلٰى مَنْ كَذَّبَ
وَتَوَلّٰى ﴿٤٨﴾ قَالَ فَمَنْ رَبُّكُمَا يَا مُوسٰى ﴿٤٩﴾ قَالَ رَبُّنَا الَّذ۪ٓي اَعْطٰى
كُلَّ شَيْءٍ خَلْقَهُ ثُمَّ هَدٰى ﴿٥٠﴾ قَالَ فَمَا بَالُ الْقُرُونِ الْاُو۫لٰى ﴿٥١﴾

**48.** “Bi rastî ji me re wiha hatîye wehîy kirin: ‘Ezab li ser wan kesan e ku diderewîn in û rû vedigerînin.’ ”
**49.** (Firewn) got: “Rabbê we kî ye, ya Mûsa?”
**50.** Got: “Rabbê me (bi lêhatîya cureyan) xulqîyeta hemû tiştan dide û paşê jî rêya rast nîşan dide.”
**51.** (Firewn) got: “Nexwe rewşa wan ên berê wê çawa bibe?”
(Dema ku Firewn li hemberî heqê nikare tiştekî bibêje derhal dest davêje qerta “dewra berê” Ka ew kesên berî daweta Mûsa (as) mirine wê aqûbeta wan çawa çêbe? Wan perestîya pûtan dikirin. Çima negihîştine wan heqîqetên ku Mûsa (as) vegotine? Nexwe ew bav û kalên ku însan li cem xwe berz û bilind dikin li gorî Mûsa (as) ji rêşaşên ku ezab heq dikin bûn? Vê pirsa ku kesên li hember heqîyê nikarin qet tu tiştî bibêjin carinan tînin rojevê hukmê bav û kalên xwe yê ku dipîrozin dikin mijara axaftinê da ku însanan li dij dawetvanên tewhîdê tehrîk bikin û wan dawetvanan noqî nîqaşekî bê sûd û bêdawî bikin. Meqseda Ebû Cehil jî ev bû ku piştî ew qas qernan ji bo ku eqrebayên xwe li dij Rasûlullah (ass) tehrîk bike/biazirîne vê suale dida pirskirin: “Ka ji Muhammed bipirsi! Ew Abdulmuttalibê ku wî mezin kiribû û Seyyîdê Qureyşîyan bû a niha li ku derê ye?” belê ka bersiva vê pirsê û pirsên wekî vê wê çawa bê dayîn? Mûsa (as) ku jê re Kitêb û ilim û hikmet hatibû wiha cewab daye:)

قَالَ عِلْمُهَا عِنْدَ رَبّ۪ي فِي كِتَابٍۚ لَا يَضِلُّ رَبّ۪ي وَلَا يَنْسٰىۙ ﴿٥٢﴾
اَلَّذ۪ي جَعَلَ لَكُمُ الْاَرْضَ مَهْدًا وَسَلَكَ لَكُمْ ف۪يهَا سُبُلًا
وَاَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءًۜ فَاَخْرَجْنَا بِه۪ٓ اَزْوَاجًا مِنْ نَبَاتٍ شَتّٰى ﴿٥٣﴾
كُلُوا وَارْعَوْا اَنْعَامَكُمْۜ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِاُو۬لِي النُّهٰىۘ ﴿٥٤﴾
مِنْهَا خَلَقْنَاكُمْ وَف۪يهَا نُع۪يدُكُمْ وَمِنْهَا نُخْرِجُكُمْ تَارَةً اُخْرٰى ﴿٥٥﴾
وَلَقَدْ اَرَيْنَاهُ اٰيَاتِنَا كُلَّهَا فَكَذَّبَ وَاَبٰى ﴿٥٦﴾ قَالَ اَجِئْتَنَا
لِتُخْرِجَنَا مِنْ اَرْضِنَا بِسِحْرِكَ يَا مُوسٰى ﴿٥٧﴾ فَلَنَأْتِيَنَّكَ بِسِحْرٍ
مِثْلِه۪ فَاجْعَلْ بَيْنَنَا وَبَيْنَكَ مَوْعِدًا لَا نُخْلِفُهُ نَحْنُ وَلَٓا اَنْتَ
مَكَانًا سُوًى ﴿٥٨﴾ قَالَ مَوْعِدُكُمْ يَوْمُ الزّ۪ينَةِ وَاَنْ يُحْشَرَ النَّاسُ
ضُحًى ﴿٥٩﴾ فَتَوَلّٰى فِرْعَوْنُ فَجَمَعَ كَيْدَهُ ثُمَّ اَتٰى ﴿٦٠﴾ قَالَ لَهُمْ مُوسٰى
وَيْلَكُمْ لَا تَفْتَرُوا عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا فَيُسْحِتَكُمْ بِعَذَابٍۚ وَقَدْ
خَابَ مَنِ افْتَرٰى ﴿٦١﴾ فَتَنَازَعُٓوا اَمْرَهُمْ بَيْنَهُمْ وَاَسَرُّوا النَّجْوٰى ﴿٦٢﴾
قَالُٓوا اِنْ هٰذَانِ لَسَاحِرَانِ يُر۪يدَانِ اَنْ يُخْرِجَاكُمْ مِنْ اَرْضِكُمْ
بِسِحْرِهِمَا وَيَذْهَبَا بِطَر۪يقَتِكُمُ الْمُثْلٰى ﴿٦٣﴾ فَاَجْمِعُوا
كَيْدَكُمْ ثُمَّ ائْتُوا صَفًّاۚ وَقَدْ اَفْلَحَ الْيَوْمَ مَنِ اسْتَعْلٰى ﴿٦٤﴾

**52.** Got: “Îlmê wan di Kitêbekê de li cem Rabbê min e. Rabbê min ne şaş dike û ne jî ji bîr dike.”

**53.** (Ew Rabb e ku) erd ji bo we kiriye doşek (hûn li ser dijîn û we îstîqrar dîtîye) û li wê derê ji bo we rêyan vekirîye û ji asîman av daxistîye. Bi wê (avê) ji hêşînahîyên curbicur me cot bi cot derxistin.

**54.** (Ji bo ku hûn) bixwin û heywanên xwe biçêrînin... Bêguman di vê de ji bo aqilmendan ayet (ên biîbret) hene.

**55.** Me hûn ji wê (axê) xuliqand û em ê dîsa vegerînin wê û em ê carekê din we ji wir derxînin/bivejînin.

**56.** Sond be me hemû ayetên xwe nîşanî wî (Firewn) dan. Wî derewand û (di înkarê de) li ber xwe da/israr kir.

**57.** Got: “Ya Mûsa! Ma tu ji me re hatî da ku bi vê sêhra xwe me ji welatê xwe nefîy bikî/derxînî?”

**58.** “Muheqeq em ê jî bi sêhreke weke sêhra te ji te re bînin. Herwiha di navbera me û xwe de demeke hevdîtinê diyar bike. Da ku ne em û ne jî tu (ji soza xwe) vegerin. (Cihê ku tu diyar bikî) bila nêzîkî me hemûyan be/cihekî navrast be.”

**59.** Got: “Bila roja hevdîtina me roja îdê/cejnê be û bila mirov jî danê sibehê bicivin.”

**60.** Firewn li paş xwe vegerîya û çû. Hîleyê xwe/fendê xwe gihande hevdu û hat.

**61.** Mûsa ji wan re got: “Xwelî li serê we be! Bi derewan bêbextîyê li Allah nekin. (Nexwe) wê bi ezabekî koka we bê qelandin. Muheqeq ew ê ku bêbextîyê dike zîyan kiriye/xisirîye.”

**62.** Di navbera xwe de bi pistepist nîqaş kirin û şêwirîn.

**63.** Gotin: “Ev herdu sêhrbaz in û bi sêhra xwe dixwazin we ji warê we nefîy bikin/derxînin û ew pergala we ya mengî/îdeal (ku we hetanî îro bi keda xwe ava kiriye) dixwazin xera/tune bikin.”

**64.** “Nexwe hîleyên/fendên xwe bikin yek û paşê kom bi kom werin. Îro kî bi ser bikeve ew xelas bûye.”

قَالُوا يَا مُوسٰٓى اِمَّٓا اَنْ تُلْقِيَ وَاِمَّٓا اَنْ نَكُونَ اَوَّلَ مَنْ اَلْقٰى ﴿٦٥﴾
قَالَ بَلْ اَلْقُواۚ فَاِذَا حِبَالُهُمْ وَعِصِيُّهُمْ يُخَيَّلُ اِلَيْهِ مِنْ سِحْرِهِمْ
اَنَّهَا تَسْعٰى ﴿٦٦﴾ فَاَوْجَسَ فٖي نَفْسِهٖ خٖيفَةً مُوسٰى ﴿٦٧﴾ قُلْنَا لَا تَخَفْ
اِنَّكَ اَنْتَ الْاَعْلٰى ﴿٦٨﴾ وَاَلْقِ مَا فٖي يَمٖينِكَ تَلْقَفْ مَا صَنَعُواۜ
اِنَّمَا صَنَعُوا كَيْدُ سَاحِرٍۜ وَلَا يُفْلِحُ السَّاحِرُ حَيْثُ اَتٰى ﴿٦٩﴾ فَاُلْقِيَ
السَّحَرَةُ سُجَّدًا قَالُٓوا اٰمَنَّا بِرَبِّ هٰرُونَ وَمُوسٰى ﴿٧٠﴾ قَالَ اٰمَنْتُمْ لَهُ
قَبْلَ اَنْ اٰذَنَ لَكُمْۜ اِنَّهُ لَكَبٖيرُكُمُ الَّذٖي عَلَّمَكُمُ السِّحْرَۚ فَلَاُقَطِّعَنَّ
اَيْدِيَكُمْ وَاَرْجُلَكُمْ مِنْ خِلَافٍ وَلَاُصَلِّبَنَّكُمْ فٖي جُذُوعِ النَّخْلِۘ
وَلَتَعْلَمُنَّ اَيُّنَٓا اَشَدُّ عَذَابًا وَاَبْقٰى ﴿٧١﴾ قَالُوا لَنْ نُؤْثِرَكَ عَلٰى مَا جَٓاءَنَا
مِنَ الْبَيِّنَاتِ وَالَّذٖي فَطَرَنَا فَاقْضِ مَٓا اَنْتَ قَاضٍۜ اِنَّمَا تَقْضٖي هٰذِهِ
الْحَيٰوةَ الدُّنْيَاۜ ﴿٧٢﴾ اِنَّٓا اٰمَنَّا بِرَبِّنَا لِيَغْفِرَ لَنَا خَطَايَانَا وَمَٓا اَكْرَهْتَنَا
عَلَيْهِ مِنَ السِّحْرِۜ وَاللّٰهُ خَيْرٌ وَاَبْقٰى ﴿٧٣﴾ اِنَّهُ مَنْ يَاْتِ رَبَّهُ مُجْرِمًا فَاِنَّ
لَهُ جَهَنَّمَۜ لَا يَمُوتُ فٖيهَا وَلَا يَحْيٰى ﴿٧٤﴾ وَمَنْ يَاْتِهٖ مُؤْمِنًا قَدْ عَمِلَ
الصَّالِحَاتِ فَاُو۬لٰٓئِكَ لَهُمُ الدَّرَجَاتُ الْعُلٰىۙ ﴿٧٥﴾ جَنَّاتُ عَدْنٍ
تَجْرٖي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِدٖينَ فٖيهَاۜ وَذٰلِكَ جَزٰٓؤُا مَنْ تَزَكّٰى ﴿٧٦﴾

**65.** Gotin: “Ya Mûsa! (Dixwazî) tu (pêşî gopalê xwe) bavêje an jî em pêşî bavêjin.”

**66.** Got: “(Na!) Bilekîs, pêşî hûn bavêjin!” (Paşê çi bibîne) ben û gopalên wan ji ber sêhra wan wekî ku birastî direvin, jê re xûya bû.

**67.** Mûsa ji nîşka ve tirsek hest kir/tirsek niqutibû dilê wî.

**68.** Me got: “Netirse! Bêguman tu, helbet yê serdest tu yî.”

**69.** “Wî yê di destê xwe yê rastê de bavêje! Wê ew çêkirînên wan biqurtîne. Tiştê ku wan çêkiriye bi tenê hîleyeke sêhrbazî ye. Û sêhrbaz her çi bike jî bi ser nakeve/xelas nabe.”

**70.** (Li ser vê yekê) hemû sêhrbaz bi hev re çûn secdê û wiha gotin: “Me îmân bi Rabbê Mûsa û Hârûn anî.”

**71.** (Firewn) got: “Nexwe berîya ku ez destûr bidim we îmân bi wî anî ha? Bêguman ew, mezinê we ye ku sêhrbazî hînî/fêrî we kiriye. Ez ê dest û pîyên we bi çeprastî jê bikim û we di qurmê darên xurman de daleqînim. Bi vê awayê hûn ê bibînin ka ezabê kî dijwartir û mayîndetir e.”
(Bnr. 7/A’râf, 123)

**72.** Gotin: “Em te qet di ser delîlên eşkere ku ji me re hatine û di ser (Allahê) xaliqê xwe re nagirin. Her çi hukmê didî bide! Bitenê tu dikarî li vê heyata dinyayê hukmê xwe biborînî.”

**73.** “Ji bo ku gunehên me/xetayên me û ew sêhrbazîya ku te bi zorê bi me dida kirin bibexşîne/efû bike, me îmân bi Rabbê xwe anîye. Allah herî bi xêrtir û mayîndetir e.”

**74.** Bêguman her kî wek gunehkarekî mucrîm/sûcdar were cem Rabbê xwe, helbet jê re cehennem heye. Li wê derê ne dimire (ku ji ezabê xelas bibe) û ne jî tê vejandin (ku sûd wergire).

**75.** Kî jî wek mumînek ku amelên salih kiriye were (bal Rabbê xwe) ji yên wisan re jî dereceyên herî bilind heye.

**76.** Cennetên Adn ku wê tê de ebedî bimînin û di binê wan de çem diherikin... Xelata wî kesê ku pak/paqij e ev e.

وَلَقَدْ اَوْحَيْنَٓا اِلٰى مُوسٰٓى اَنْ اَسْرِ بِعِبَادٖى فَاضْرِبْ لَهُمْ طَرٖيقًا
فِى الْبَحْرِ يَبَسًاۙ لَا تَخَافُ دَرَكًا وَلَا تَخْشٰى ﴿٧٧﴾ فَاَتْبَعَهُمْ فِرْعَوْنُ
بِجُنُودِهٖ فَغَشِيَهُمْ مِنَ الْيَمِّ مَا غَشِيَهُمْؕ ﴿٧٨﴾ وَاَضَلَّ فِرْعَوْنُ
قَوْمَهُ وَمَا هَدٰى ﴿٧٩﴾ يَا بَنٖٓى اِسْرَٓائٖلَ قَدْ اَنْجَيْنَاكُمْ مِنْ عَدُوِّكُمْ
وَوٰعَدْنَاكُمْ جَانِبَ الطُّورِ الْاَيْمَنَ وَنَزَّلْنَا عَلَيْكُمُ الْمَنَّ
وَالسَّلْوٰى ﴿٨٠﴾ كُلُوا مِنْ طَيِّبَاتِ مَا رَزَقْنَاكُمْ وَلَا تَطْغَوْا
فٖيهِ فَيَحِلَّ عَلَيْكُمْ غَضَبٖىۚ وَمَنْ يَحْلِلْ عَلَيْهِ غَضَبٖى فَقَدْ هَوٰى ﴿٨١﴾
وَاِنّٖى لَغَفَّارٌ لِمَنْ تَابَ وَاٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا ثُمَّ اهْتَدٰى ﴿٨٢﴾
وَمَٓا اَعْجَلَكَ عَنْ قَوْمِكَ يَا مُوسٰى ﴿٨٣﴾ قَالَ هُمْ اُولَٓاءِ عَلٰٓى اَثَرٖى
وَعَجِلْتُ اِلَيْكَ رَبِّ لِتَرْضٰى ﴿٨٤﴾ قَالَ فَاِنَّا قَدْ فَتَنَّا قَوْمَكَ مِنْ بَعْدِكَ
وَاَضَلَّهُمُ السَّامِرِيُّ ﴿٨٥﴾ فَرَجَعَ مُوسٰٓى اِلٰى قَوْمِهٖ غَضْبَانَ اَسِفًاۚ
قَالَ يَا قَوْمِ اَلَمْ يَعِدْكُمْ رَبُّكُمْ وَعْدًا حَسَنًاؕ اَفَطَالَ عَلَيْكُمُ
الْعَهْدُ اَمْ اَرَدْتُمْ اَنْ يَحِلَّ عَلَيْكُمْ غَضَبٌ مِنْ رَبِّكُمْ فَاَخْلَفْتُمْ
مَوْعِدٖى ﴿٨٦﴾ قَالُوا مَٓا اَخْلَفْنَا مَوْعِدَكَ بِمَلْكِنَا وَلٰكِنَّا حُمِّلْنَٓا
اَوْزَارًا مِنْ زٖينَةِ الْقَوْمِ فَقَذَفْنَاهَا فَكَذٰلِكَ اَلْقَى السَّامِرِيُّۙ ﴿٨٧﴾

**77.** Sond be me ji Mûsa re wiha wehîy kir: “Bi evdên min re bi şev derkevin rê. Ji wan re di behrê de rêyeke ziwa veke. Ji gihîştina (Firewn) netirse û fikar neke (di rêya xwe de here).”

**78.** Firewn bi leşkerên xwe ve da pey wan. (Ew hêj ne gihîştibûn wan) ji behrê (pelên fetsînok/xeneqoyî) bi wan girt û ew rapêçan.

**79.** Firewn qewmê xwe xerifand. Negihande rêya rast.

**80.** Ya Benî Îsraîl! Muheqeq me hûn ji dijminên we xelas kirin û me li alîyê rastê ya Çiyayê Tûrê (ji bo civînê) peyv da hev û me di ser we de helawa qudretê/gezo û goştê susikê/qarîtê daxistibû.

**81.** Ji rizqê ku me daye we, yên paqij bixwin. Di wê mijarê de ji hedê xwe neborin. Nexwe wê xezeba min li ser we wacib bibe. Kesê ku xezeba min lê wacib bibe, bêguman ew helak bûye.

**82.** Bêguman ez li ser wan ên ku tobe dikin û îmân anîne û amelê salih dikin û gihîştine hîdayetê pir efûkar/mihrîvan im.




**83.** “Ya Mûsa! Çi tiştî tu bi zûka/bi lezûbez ji qewmê te veqetand (û hatî cem me)?

**84.** Got: “Ew li pey min in (min ew çawa hiştibe li ser wê halê ne). Rabbê min! Ji bo ku tu ji min razî bibî ez bi bal te ve bi lez hatim.”

**85.** Got: “Bêguman me di pey te de qewmê te (di dînê wan de) ceriband û Samirî wan ji rê derxist.”

**86.** Li ser vê yekê Mûsa bi hêrs û xemgînî vegerîya cem qewmê xwe û got: “Gelî qewmê min! Erê ma Rabbê we weadeke xweşik nedabû we? Erê ma ew dem ji we re pir dirêj hat? Ya na we xwest ku xezeba Rabbê we li ser we bibara, ji bo vê hûn ji soza ku we dabû min vegerîyan?

**87.** Gotin: “Em ne bi vîna/bi îradeya xwe ji soza ku me dabû te vegerîyane. Lê ji eşyayê (Firewn û qewmê wî) me hinek zînet bar kiribû. Me ew avêtin (nav agir) û Samirî jî avêt.”

فَاَخْرَجَ لَهُمْ عِجْلًا جَسَدًا لَهُ خُوَارٌ فَقَالُوا هٰذَٓا اِلٰهُكُمْ
وَاِلٰهُ مُوسٰى فَنَسِيَۜ ﴿٨٨﴾ اَفَلَا يَرَوْنَ اَلَّا يَرْجِعُ اِلَيْهِمْ قَوْلًاۙ
وَلَا يَمْلِكُ لَهُمْ ضَرًّا وَلَا نَفْعًا ﴿٨٩﴾ وَلَقَدْ قَالَ لَهُمْ هٰرُونُ
مِنْ قَبْلُ يَا قَوْمِ اِنَّمَا فُتِنْتُمْ بِهٖۚ وَاِنَّ رَبَّكُمُ الرَّحْمٰنُ فَاتَّبِعُونٖي
وَاَطٖيعُٓوا اَمْرٖي ﴿٩٠﴾ قَالُوا لَنْ نَبْرَحَ عَلَيْهِ عَاكِفٖينَ
حَتّٰى يَرْجِعَ اِلَيْنَا مُوسٰى ﴿٩١﴾ قَالَ يَا هٰرُونُ مَا مَنَعَكَ
اِذْ رَاَيْتَهُمْ ضَلُّوٓاۙ ﴿٩٢﴾ اَلَّا تَتَّبِعَنِۜ اَفَعَصَيْتَ اَمْرٖي ﴿٩٣﴾ قَالَ يَبْنَؤُمَّ
لَا تَاْخُذْ بِلِحْيَتٖي وَلَا بِرَاْسٖيۚ اِنّٖي خَشٖيتُ اَنْ تَقُولَ فَرَّقْتَ
بَيْنَ بَنٖٓي اِسْرَٓائٖيلَ وَلَمْ تَرْقُبْ قَوْلٖي ﴿٩٤﴾ قَالَ فَمَا خَطْبُكَ
يَا سَامِرِيُّ ﴿٩٥﴾ قَالَ بَصُرْتُ بِمَا لَمْ يَبْصُرُوا بِهٖ فَقَبَضْتُ قَبْضَةً
مِنْ اَثَرِ الرَّسُولِ فَنَبَذْتُهَا وَكَذٰلِكَ سَوَّلَتْ لٖي نَفْسٖي ﴿٩٦﴾
قَالَ فَاذْهَبْ فَاِنَّ لَكَ فِي الْحَيٰوةِ اَنْ تَقُولَ لَا مِسَاسَۖ
وَاِنَّ لَكَ مَوْعِدًا لَنْ تُخْلَفَهُۚ وَانْظُرْ اِلٰٓى اِلٰهِكَ الَّذٖي ظَلْتَ
عَلَيْهِ عَاكِفًاۜ لَنُحَرِّقَنَّهُ ثُمَّ لَنَنْسِفَنَّهُ فِي الْيَمِّ نَسْفًا ﴿٩٧﴾
اِنَّمَٓا اِلٰهُكُمُ اللّٰهُ الَّذٖي لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۜ وَسِعَ كُلَّ شَيْءٍ عِلْمًا ﴿٩٨﴾

**88.** Ji wan re di sûreta golikê de peykerekî ku diorîya çêkir û (Samirî û yên pê re) gotin: "Ha ev îlâhê we û Mûsa ye. Lê wî (Mûsa) Ji bîr kir."

**89.** Erê ma ew nabînin ku ew (dema ku tiştekî dibêjin) nikare bersiv bide wan û ji bo wan nikare feydeyekî pêk bîne û zerarekî jî ji wan dûr bike/bide paş?

**90.** Sond be, hêj berê de Hârûn ji wan re got: "Gelî qewmê min! Hûn bi vê (golikê) bitenê ketin fitnê/hatin ceribandin. Bêguman Rabbê we Rahmân e. Nexwe bidine pey min û îtaeta emrê min bikin."

**91.** Gotin: "Hetanî Mûsa vegere nav me, em ê rawestina xwe ya li ber serê wî bidomînin."

**92.** (Mûsa) got: "Ya Hârûn! Di rewşa ku te dît ew xerifîne, (ji bo ku tu tiştekî bikî) çi ji te re bû manî?"

**93.** "Te çima neda pey min? Qey nexwe tu li ber emrê min rabû yî?"

**94.** (Hârûn) got: "Hê kurê dêya min! Rih (ê min) û pora min nekişkişîne! Ez ji vê tirsîyam ku tu ji min re bibêjî: 'Te dubendî xistîye nava Benî Îsraîl û te bi gotina min nekir."

**95.** Got: "Rewşa te çibû/te çima tiştekî wisa kir, ya Samirî?"

**96.** Got: "Tiştên ku wan nedîtibûn min dît. Min ji şopa qasid/melâîket çengek girt û ew avêt. Nefsa min ev wisa ji min re xemiland."

**97.** Got: "Here/biqeşite! Êdî di dirêjahîya heyata xwe de tu yê bibêjî: 'La misâs! (Bila tu kes destê xwe nede min û ez jî destê xwe nadim tu kesî).' Û ji te re demeke (ku tu yê helak bibî) şaşnebar heye. Niha li îlâhê xwe, ya ku bênavber li ber serê wî lihêvîyê dimînî binêre! Sond be em ê wî bişewitînin û paşê jî (xwelîya wî) ber bayê behrê bikin."

**98.** Îlâhê we bitenê Allah e... Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. (Wî) her tiştî bi îlmê xwe dorpêç kiriye.

كَذٰلِكَ نَقُصُّ عَلَيْكَ مِنْ اَنْبَٓاءِ مَا قَدْ سَبَقَۚ وَقَدْ اٰتَيْنَاكَ
مِنْ لَدُنَّا ذِكْرًاۚ ﴿٩٩﴾ مَنْ اَعْرَضَ عَنْهُ فَاِنَّهُ يَحْمِلُ يَوْمَ
الْقِيٰمَةِ وِزْرًاۙ ﴿١٠٠﴾ خَالِدِينَ فِيهِۜ وَسَٓاءَ لَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ حِمْلًاۙ ﴿١٠١﴾
يَوْمَ يُنْفَخُ فِي الصُّورِ وَنَحْشُرُ الْمُجْرِمِينَ يَوْمَئِذٍ زُرْقًاۚ ﴿١٠٢﴾
يَتَخَافَتُونَ بَيْنَهُمْ اِنْ لَبِثْتُمْ اِلَّا عَشْرًا ﴿١٠٣﴾ نَحْنُ اَعْلَمُ بِمَا يَقُولُونَ
اِذْ يَقُولُ اَمْثَلُهُمْ طَرِيقَةً اِنْ لَبِثْتُمْ اِلَّا يَوْمًاۚ ﴿١٠٤﴾ وَيَسْـَٔلُونَكَ
عَنِ الْجِبَالِ فَقُلْ يَنْسِفُهَا رَبّ۪ي نَسْفًاۙ ﴿١٠٥﴾ فَيَذَرُهَا قَاعًا صَفْصَفًاۙ ﴿١٠٦﴾
لَا تَرٰى فِيهَا عِوَجًا وَلَٓا اَمْتًا ﴿١٠٧﴾ يَوْمَئِذٍ يَتَّبِعُونَ الدَّاعِيَ
لَا عِوَجَ لَهُۚ وَخَشَعَتِ الْاَصْوَاتُ لِلرَّحْمٰنِ فَلَا تَسْمَعُ اِلَّا هَمْسًا ﴿١٠٨﴾
يَوْمَئِذٍ لَا تَنْفَعُ الشَّفَاعَةُ اِلَّا مَنْ اَذِنَ لَهُ الرَّحْمٰنُ وَرَضِيَ لَهُ
قَوْلًا ﴿١٠٩﴾ يَعْلَمُ مَا بَيْنَ اَيْدِيهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ وَلَا يُحِيطُونَ بِهِ عِلْمًا ﴿١١٠﴾
وَعَنَتِ الْوُجُوهُ لِلْحَيِّ الْقَيُّومِۜ وَقَدْ خَابَ مَنْ حَمَلَ ظُلْمًا ﴿١١١﴾
وَمَنْ يَعْمَلْ مِنَ الصَّالِحَاتِ وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَلَا يَخَافُ
ظُلْمًا وَلَا هَضْمًا ﴿١١٢﴾ وَكَذٰلِكَ اَنْزَلْنَاهُ قُرْاٰنًا عَرَبِيًّا وَصَرَّفْنَا
فِيهِ مِنَ الْوَعِيدِ لَعَلَّهُمْ يَتَّقُونَ اَوْ يُحْدِثُ لَهُمْ ذِكْرًا ﴿١١٣﴾

**99.** Her wiha em hinek ji agahîyên wan ên berê (jîyîne) ji te re radigihînin. Muheqeq me ji cem xwe Qur'an/zikir daye te.

**100.** Kî jî rûyê xwe jê vegerîne bêşik ew ê roja qiyametê gunehekî hilgire.

**101.** Ew di bin wê (barê) de bêdawî bimînin. Ew roja qiyametê ji bo wan çi barekî (hilgirînin) xerab e.

**102.** Roja ku di sûrê de tê pifkirin, (ji ber tirsa ku hest dikin û tî bûnê) em wan gunehkarên mucrîm/sûcdar wek reşûşînbûyî (divejînin û) di hizûrê de dicivînin.

**103.** Di navbera xwe de wiha pistepistê dikin: “Hûn (li dinyayê) bi tenê deh roj man.”

**104.** Dema ku ew ên rêya wan herî zêde nêzî rastîyê bû wiha gotin: “Hûn (li dinyayê) enceq rojek man.” em bi ya ku digotin herî çêtir dizanin.

**105.** Ew ji çiyan ji te dipirsin. Bibêje: “Wê Rabbê min wan hûr û hêra bike û ber ba bixe.”

**106.** “Wê cihê wan (çiyan wekî ku qet tu avahî tê de tune be) rast û (wekî ku qet tu heşînahî tune be) rût bike.”

**107.** “Tu li wê derê ne xwarîtî/çewtîtî û ne jî kumbalek/pozikek dibînî.

**108.** Wê rojê dê hemû însan bidin pey (dengê) wî bangevanî. Ji ber (ezameta) Rahmân hemû deng hatine birîn. Ji pistepistê pê ve tu denga seh nakî.

**109.** Wê rojê ji xeynî ew ê Rahmân destûr daye wan û ji gotina wan qayîl bûye pê ve şefaeta tu kesî wê feyde nede.

(Di Qur'anê de ji bo têgeha Şefaetê bnr. 43/Zuxruf, 86.)

**110.** Ew ya li pêşîya wan û ya li dû wan jî dizane. Lê ew bi îlmê xwe nikarin wî dorpêç bikin.

**111.** Hemû rû ji wî yê (xwedî heyat û yê ku heyatê dide hemû mexluqatan) Hayy û (ji bo hebûnê qet ne muhtacê tu tiştî ye lê hebûna her tiştî girêdayîyê wî) Qayyûm re bi zelîltî stuxwar in. Muheqeq ew ên zilim hilgirtine (ew ên bi barê zilmê/şirkê hatine) xisirîne/winda kirine.

**112.** Kî jî wek mumîn amelên salih kiribe, ew ji neheqîyê jî û ji binpêkirina heqê xwe jî natirse.

**113.** Her wiha me li ser zimanê Erebî ev Qur'an nazil kir. Me tiştên bi xewf in (waîdan/tehdîdan) bi eşkerehî beyan kir, hêvî heye ku xwe biparêzin an jî şîret bigirin.

فَتَعَالَى اللّٰهُ الْمَلِكُ الْحَقُّۚ وَلَا تَعْجَلْ بِالْقُرْاٰنِ مِنْ قَبْلِ
اَنْ يُقْضٰٓى اِلَيْكَ وَحْيُهُۘ وَقُلْ رَبِّ زِدْن۪ي عِلْمًا ﴿١١٤﴾
وَلَقَدْ عَهِدْنَٓا اِلٰٓى اٰدَمَ مِنْ قَبْلُ فَنَسِيَ وَلَمْ نَجِدْ لَهُ عَزْمًاۚ ﴿١١٥﴾ وَاِذْ
قُلْنَا لِلْمَلٰٓئِكَةِ اسْجُدُوا لِاٰدَمَ فَسَجَدُٓوا اِلَّٓا اِبْل۪يسَۜ اَبٰى ﴿١١٦﴾
فَقُلْنَا يَٓا اٰدَمُ اِنَّ هٰذَا عَدُوٌّ لَكَ وَلِزَوْجِكَ فَلَا يُخْرِجَنَّكُمَا
مِنَ الْجَنَّةِ فَتَشْقٰى ﴿١١٧﴾ اِنَّ لَكَ اَلَّا تَجُوعَ ف۪يهَا وَلَا تَعْرٰىۙ ﴿١١٨﴾
وَاَنَّكَ لَا تَظْمَؤُا ف۪يهَا وَلَا تَضْحٰى ﴿١١٩﴾ فَوَسْوَسَ اِلَيْهِ الشَّيْطَانُ
قَالَ يَٓا اٰدَمُ هَلْ اَدُلُّكَ عَلٰى شَجَرَةِ الْخُلْدِ وَمُلْكٍ لَا يَبْلٰى ﴿١٢٠﴾
فَاَكَلَا مِنْهَا فَبَدَتْ لَهُمَا سَوْاٰتُهُمَا وَطَفِقَا يَخْصِفَانِ
عَلَيْهِمَا مِنْ وَرَقِ الْجَنَّةِۘ وَعَصٰٓى اٰدَمُ رَبَّهُ فَغَوٰىۖ ﴿١٢١﴾
ثُمَّ اجْتَبٰيهُ رَبُّهُ فَتَابَ عَلَيْهِ وَهَدٰى ﴿١٢٢﴾ قَالَ اهْبِطَا مِنْهَا
جَم۪يعًا بَعْضُكُمْ لِبَعْضٍ عَدُوٌّۚ فَاِمَّا يَاْتِيَنَّكُمْ مِنّ۪ي هُدًى
فَمَنِ اتَّبَعَ هُدَايَ فَلَا يَضِلُّ وَلَا يَشْقٰى ﴿١٢٣﴾ وَمَنْ اَعْرَضَ
عَنْ ذِكْر۪ي فَاِنَّ لَهُ مَع۪يشَةً ضَنْكًا وَنَحْشُرُهُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ
اَعْمٰى ﴿١٢٤﴾ قَالَ رَبِّ لِمَ حَشَرْتَن۪ٓي اَعْمٰى وَقَدْ كُنْتُ بَص۪يرًا ﴿١٢٥﴾

**114.** Ew Allahê (hakimîyetê/serwerîyê û yê ku di milkê xwe de wekî daxwaza xwe teserûfê dike) Melîk û ( heq û heqîqetê) Haq, berz e/bilind e. Hetanî ji te re wehîya Qur'anê (ku ji te re tê) neqede (ji bo jiberkirina wê) nelezîne! Bibêje: “Rabbê min, îlmê min zêde bike.”

**115.** Sond be berîya vê (ji bo ji darê nexwe) me ehd dabû Âdem. Lê wî ji bîr kir. Me di wî de (li ser vê ehdê) tu ezm/biryardarî nedît.

**116.** Bi bîr bîne! Me ji melâîketan re gotibû: “Ji Âdem re secde bikin.” Ji xeynî Îblîs hemûyan secde kirin. Lê wî, di ber xwe da.

**117.** Me got: “Ya Âdem! Bêşik ev (şeytan) ji te û ji jina te re dijmin e. Nebe ku we ji cennetê derxîne! Nexwe tu yê bedbext/bextbireş bibî.

**118.** “Bêguman li wê derê ji bo te ne birçîbûn heye û ne jî tazîbûn.”

**119.** “Li wê derê tu ne tî dibî û ne jî di bin tavê de dişewitî.”

**120.** Şeytan weswese da wî û jê re wiha got: “Ya Âdem! Ez ji te re dara sermedîyê/bêdawîtîyê (ku dema bixwî tu yê bibî ji nemiran) û milkê ku naqede nîşanî te bidim?

**121.** (Her duyan jî) jê xwarin û hema cihên eyb/ewretên wan ji wan ve hate xuyakirin. Bi pelên cennetê xwe nixumandin. Âdem, ji Rabbê xwe re îsyan kir û rêya xwe şaş kir.

**122.** Paşê Rabbê wî ew hilbijart û toba wî pejirand û hîdayet kir.

**123.** Got: “Hûn hemû wek neyar ji wê derê dakevin (ser rûyê erdê). Wê ji we re hîdayetek ji cem min were. Kî jî bide pey hîdayeta min êdî ew rêşaş û bedbext nabe.

(Bnr.2/Baqara, 38)

**124.** “Kî jî ji zikra min (ji Kitêba ku min şandîye) rû vegerîne bêşik ji bo wî jiyaneke teng û tarî heye û em ê wî roja qiyametê wek kor bivejînin/heşir bikin.

**125.** (Ew) dibêje: “Rabbê min! Te çima ez kor heşir kirim? Hal ev e ku ez (li dinyayê) yekî bi çav bûm.”

قَالَ كَذٰلِكَ اَتَتْكَ اٰيَاتُنَا فَنَسٖيتَهَاۚ وَكَذٰلِكَ الْيَوْمَ تُنْسٰى ﴿١٢٦﴾
وَكَذٰلِكَ نَجْزٖي مَنْ اَسْرَفَ وَلَمْ يُؤْمِنْ بِاٰيَاتِ رَبِّهٖۜ وَلَعَذَابُ الْاٰخِرَةِ
اَشَدُّ وَاَبْقٰى ﴿١٢٧﴾ اَفَلَمْ يَهْدِ لَهُمْ كَمْ اَهْلَكْنَا قَبْلَهُمْ مِنَ الْقُرُونِ
يَمْشُونَ فٖي مَسَاكِنِهِمْۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِاُولِي النُّهٰىۚ ﴿١٢٨﴾
وَلَوْلَا كَلِمَةٌ سَبَقَتْ مِنْ رَبِّكَ لَكَانَ لِزَامًا وَاَجَلٌ مُسَمًّىۜ ﴿١٢٩﴾
فَاصْبِرْ عَلٰى مَا يَقُولُونَ وَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ قَبْلَ طُلُوعِ الشَّمْسِ
وَقَبْلَ غُرُوبِهَاۚ وَمِنْ اٰنَٓائِ الَّيْلِ فَسَبِّحْ وَاَطْرَافَ النَّهَارِ لَعَلَّكَ
تَرْضٰى ﴿١٣٠﴾ وَلَا تَمُدَّنَّ عَيْنَيْكَ اِلٰى مَا مَتَّعْنَا بِهٖٓ اَزْوَاجًا مِنْهُمْ
زَهْرَةَ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا لِنَفْتِنَهُمْ فٖيهِۜ وَرِزْقُ رَبِّكَ خَيْرٌ وَاَبْقٰى ﴿١٣١﴾
وَأْمُرْ اَهْلَكَ بِالصَّلٰوةِ وَاصْطَبِرْ عَلَيْهَاۜ لَا نَسْـَٔلُكَ رِزْقًاۜ
نَحْنُ نَرْزُقُكَۜ وَالْعَاقِبَةُ لِلتَّقْوٰى ﴿١٣٢﴾ وَقَالُوا لَوْلَا يَأْتٖينَا بِاٰيَةٍ مِنْ رَبِّهٖۜ
اَوَلَمْ تَأْتِهِمْ بَيِّنَةُ مَا فِي الصُّحُفِ الْاُولٰى ﴿١٣٣﴾ وَلَوْ اَنَّٓا اَهْلَكْنَاهُمْ
بِعَذَابٍ مِنْ قَبْلِهٖ لَقَالُوا رَبَّنَا لَوْلَٓا اَرْسَلْتَ اِلَيْنَا رَسُولًا فَنَتَّبِعَ
اٰيَاتِكَ مِنْ قَبْلِ اَنْ نَذِلَّ وَنَخْزٰى ﴿١٣٤﴾ قُلْ كُلٌّ مُتَرَبِّصٌ فَتَرَبَّصُواۚ
فَسَتَعْلَمُونَ مَنْ اَصْحَابُ الصِّرَاطِ السَّوِيِّ وَمَنِ اهْتَدٰى ﴿١٣٥﴾

**126.** (Allah) wê bibêje: “Va wiha ye! Ayetên me ji te re hatibûn, te ji bîr kirin. Îro tu jî bêyî ji bîr kirin û (di rewşa xwe de bêyî terikandin).”

**127.** Em wan ên zêdegavî dikin û îman bi ayetên me naynin jî wiha ceza dikin. Bêguman ezabê axîretê herî dijwartir û mayîndetir e.

**128.** Berî wan ji alî me ve helakkirina pir qewman jî ew negihandin heqîqetê/hîdayetê? Ew bixwe di navbera avahîyan (wan wêranên ji helakê paş de mane) de digerin (û rêç û şopa helakê dibînin). Bêşik di vê de ji bo aqilmendan ayet hene.

**129.** Eger ji Rabbê te ve di berê de sozê/hukmê wî demeke diyarkirî nebûya (wê helaka wan) çarenîn/jênerev bûna.

**130.** (Herwiha) tu ji ber gotina wan ve sebir bike! Berî derketina rojê û berî roj biçe ava û hinek ji wextê şevê û di serê (di destpêka) û di binê (di dawîya) rojê de Rabbê xwe tesbîh bike da ku (Rabbê te ji te û tu jî ji Rabbê xwe) qayîl/razî bibî.

(Dawetvanê tewhîdê wek sünnetullah a neguhêrbar wê bi her cureyên ezîyetan re rû bi rû bimîne û wê tundîya/şîdeta devkî û fiêlî jî bibîne. (3/Âl-î Îmran, 186). Di rewşên wisan de Rabbê me şîreta sebrê û hemdê û tesbîh kirina Allah (ac) û bi zêdekirina secdeyan nêzbûna Allah (ac) (15/Hîcr, 97-98) û bihevre bûna bi mumînan re (18/Kehf, 28) li me dike.)

**131.** Çavê xwe bernede wê xemla/xweşikîya dinyayê ew a ku me ji bo îmtîhanê daye komekî ji wan! Rizqê Rabbê te herî bi xêrtir û mayîndetir e.

**132.** Tu emrê nimêjê li ehlê xwe/li malbata xwe bike û tu jî tê de sebirvan/biryardar be. Em ji te riziq naxwazin. Em (in yê ku) riziq didin te. Aqûbet/encama xêrê ji bo Mutteqîyan e. (Ji bo kesên xwedî teqwa ne.)

**133.** Gotin: “Ma ne hewce bû ku ji Rabbê xwe ayetek/mucîzeyek ji me re bianîya?” Qey ji wan re di suhûfên berê de delîlên eşkera nehatibû?

**134.** Eger me bi ezabekî berî vêya ew helak bikira, bêşik dê wiha bigotana: “Rabbê me! De hema te ji me re pêxemberek bişanda û berî ku em bi wê (ezabê) zelîl û riswa bibin tabiê ayetên te bibûna.”

**135.** Bibêje: “Herkes çavnêrî/raçavî dike! Hûn jî çavnêrî/raçavî bikin (em binêrin). Hûn ê di pêş de bizanibin ka ehlê rêya rast kî ye û yê ku gihîştîye hîdayetê kî ye.”




سُورَةُ الْاَنْبِيَٓاءِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ مِائَةٌ وَاثْنَتَا عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
اِقْتَرَبَ لِلنَّاسِ حِسَابُهُمْ وَهُمْ ف۪ي غَفْلَةٍ مُعْرِضُونَۚ ﴿١﴾
مَا يَأْت۪يهِمْ مِنْ ذِكْرٍ مِنْ رَبِّهِمْ مُحْدَثٍ اِلَّا اسْتَمَعُوهُ وَهُمْ
يَلْعَبُونَۙ ﴿٢﴾ لَاهِيَةً قُلُوبُهُمْۜ وَاَسَرُّوا النَّجْوَىۗ الَّذ۪ينَ ظَلَمُواۗ هَلْ هٰذَٓا
اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُكُمْۚ اَفَتَأْتُونَ السِّحْرَ وَاَنْتُمْ تُبْصِرُونَ ﴿٣﴾
قَالَ رَبّ۪ي يَعْلَمُ الْقَوْلَ فِي السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِۘ وَهُوَ السَّم۪يعُ
الْعَل۪يمُ ﴿٤﴾ بَلْ قَالُٓوا اَضْغَاثُ اَحْلَامٍ بَلِ افْتَرٰيهُ بَلْ هُوَ شَاعِرٌۚ
فَلْيَأْتِنَا بِاٰيَةٍ كَمَٓا اُرْسِلَ الْاَوَّلُونَ ﴿٥﴾ مَٓا اٰمَنَتْ قَبْلَهُمْ مِنْ قَرْيَةٍ
اَهْلَكْنَاهَاۚ اَفَهُمْ يُؤْمِنُونَ ﴿٦﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَا قَبْلَكَ اِلَّا رِجَالًا
نُوح۪ٓي اِلَيْهِمْ فَسْـَٔلُٓوا اَهْلَ الذِّكْرِ اِنْ كُنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿٧﴾
وَمَا جَعَلْنَاهُمْ جَسَدًا لَا يَأْكُلُونَ الطَّعَامَ وَمَا كَانُوا خَالِد۪ينَ ﴿٨﴾
ثُمَّ صَدَقْنَاهُمُ الْوَعْدَ فَاَنْجَيْنَاهُمْ وَمَنْ نَشَٓاءُ وَاَهْلَكْنَا الْمُسْرِف۪ينَ ﴿٩﴾
لَقَدْ اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكُمْ كِتَابًا ف۪يهِ ذِكْرُكُمْۜ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿١٠﴾

## 21. SÛREYA ENBÎYA

*(Sûreya Enbîya, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sed û dozdeh (112) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya bîst û yekemîn e. Enbîya, tê ser maneya "Pexamberan". Sûre, ji ber ku hin wesfên pêxemberan vedibêje û behsa dawet û teblîxa hijdeh (18) pêxemberên ku qewmên xwe bal bi tewhîdê ve vedixwînin dike bi navê sûreya Enbîya/Pêxemberan hatîye binav kirin. Aqîdeya muşrîkên Mekkeyê rexne dike. Herwisa li ser da'wa tewhîdê têkoşîna pêxemberan vedibêje. Ligel vê behsa Yecûc û Mecûc jî tê kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim).*

**1.** Ji bo însanan dema hisabê nêzîk bûye. (Hal ev e ku) ew, bi bêpêwendîtî û bi rûvegerandinê di xefletê de (jiyana xwe didomînin).

**2.** Çi dema ji Rabbê wan ji wan re zikrekî/ayetekî nû were, teqez ew bi îstîhza/bi tinazkarî lê guhdarî dikin.

**3.** Qelbê wan di lîstikê de ye... Ew ên zilimkar (di navbera xwe de) bi dizîka pistepistê dikin: "Ma ev ê ha jî ne mirovekî wekî we ye? Qey hûn ê ber bi çavan re bi sihrê bikevin (hûn ê teslîm bibin)?

**4.** Got: "Rabbê min, bi hemû gotinên di erd û esmanan de (tên axaftin) dizane. Ew (yê ku hemû tiştan dibihîze) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e."

**5.** Gotin: "(Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, ev ên ha taxeyek/desteyek xewnerojk in/xewnên tevlîhev in. Wî ji ber xwe lihev anîye... Nexêr! (Bibe nebe) ew enceq şairek e. (Ger ne wisan be) çawa ku ji wan ên berê re hatibûn, bila ji me re jî ayetek/mucîzeyek bîne (de em bibînin)."

**6.** Qet tu war ên (xelk ên) ku me ew berî wan helak kiribûn jî îmân neanîbûn! Erê ma qey ew ê îmân bînin?

**7.** Me di berîya te de ew zilamên ku ji wan re wehîy şandîye jî her zilam bûn. Eger hûn nizanin ji ehlê zikir bipirsin.

**8.** Me ew nekirin cesedên ku xwarinê naxwin. Ew (li vê dinyayê) ebedî jî namînin.

**9.** Piştre me ew soza ku daye wan bi cih anî û me ew û yên me xwest xelas kirin. Me ew ên musrîf/pirole jî helak kirin.

**10.** Sond be me ji we re Kitêbeke wisan nazil kiriye ku (şîretan dihewîne û) nav û rûmeta we tê de ye. Hûn hê jî aqil nagirin?

وَكَمْ قَصَمْنَا مِنْ قَرْيَةٍ كَانَتْ ظَالِمَةً وَاَنْشَاْنَا بَعْدَهَا
قَوْمًا اٰخَر۪ينَ ﴿١١﴾ فَلَمَّٓا اَحَسُّوا بَاْسَنَٓا اِذَا هُمْ مِنْهَا يَرْكُضُونَۜ ﴿١٢﴾
لَا تَرْكُضُوا وَارْجِعُٓوا اِلٰى مَٓا اُتْرِفْتُمْ ف۪يهِ وَمَسَاكِنِكُمْ
لَعَلَّكُمْ تُسْـَٔلُونَ ﴿١٣﴾ قَالُوا يَا وَيْلَنَٓا اِنَّا كُنَّا ظَالِم۪ينَ ﴿١٤﴾ فَمَا زَالَتْ
تِلْكَ دَعْوٰيهُمْ حَتّٰى جَعَلْنَاهُمْ حَص۪يدًا خَامِد۪ينَ ﴿١٥﴾ وَمَا خَلَقْنَا
السَّمَٓاءَ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا لَاعِب۪ينَ ﴿١٦﴾ لَوْ اَرَدْنَٓا اَنْ نَتَّخِذَ لَهْوًا
لَاتَّخَذْنَاهُ مِنْ لَدُنَّاۗ اِنْ كُنَّا فَاعِل۪ينَ ﴿١٧﴾ بَلْ نَقْذِفُ بِالْحَقِّ عَلَى
الْبَاطِلِ فَيَدْمَغُهُ فَاِذَا هُوَ زَاهِقٌۜ وَلَكُمُ الْوَيْلُ مِمَّا تَصِفُونَ ﴿١٨﴾
وَلَهُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَمَنْ عِنْدَهُ لَا يَسْتَكْبِرُونَ
عَنْ عِبَادَتِه۪ وَلَا يَسْتَحْسِرُونَۚ ﴿١٩﴾ يُسَبِّحُونَ الَّيْلَ وَالنَّهَارَ
لَا يَفْتُرُونَ ﴿٢٠﴾ اَمِ اتَّخَذُٓوا اٰلِهَةً مِنَ الْاَرْضِ هُمْ يُنْشِرُونَ ﴿٢١﴾
لَوْ كَانَ ف۪يهِمَٓا اٰلِهَةٌ اِلَّا اللّٰهُ لَفَسَدَتَاۚ فَسُبْحَانَ اللّٰهِ رَبِّ الْعَرْشِ عَمَّا
يَصِفُونَ ﴿٢٢﴾ لَا يُسْـَٔلُ عَمَّا يَفْعَلُ وَهُمْ يُسْـَٔلُونَ ﴿٢٣﴾ اَمِ اتَّخَذُوا
مِنْ دُونِه۪ٓ اٰلِهَةًۜ قُلْ هَاتُوا بُرْهَانَكُمْۚ هٰذَا ذِكْرُ مَنْ مَعِيَ وَذِكْرُ
مَنْ قَبْل۪يۜ بَلْ اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْلَمُونَۙ الْحَقَّ فَهُمْ مُعْرِضُونَ ﴿٢٤﴾

**11.** Me gelek xelkê welatan (bi awayê ku nikaribin pişta xwe rast bikin) helak kirin. Me di pişt wan de hinek qewmên din anîn meydanê.

**12.** Çi dema pêjna ezaba me kirin ji wê derê bi lez dest bi revê/dûrbûnê kirin.

**13.** Nebezin û nerevin! Vegerin war û jiyana xwe yên xweş (ku hûn bi nîmet û dewlemendîyê bi ser xwe de çûbûn). (Ka em binêrin, gelo dê we ji ezaba Allah biparêze?) (Hûn lihêvîya çi bûn? Helbet) hûn ê bên berpirsîyarkirin.

**14.** Gotin: “Xwelî li serê me be! Bêguman em kesên zalim bûn.”

**15.** Hetanî ku me ew kirin wek dexlekî dirûtî û agirê vemirî, wan lixwedan û man.

**16.** Erd û esman û tiştên di navbera wan de, me ji bo lîstikê/pêmijûlîyê ne xuliqandîye.

(Ji bo meqseda xuliqandinê bnr. 38/Sâd, 27.)

**17.** Eger me lîstik û pêmijûlahîyê bigirtana, (belê) me yê wê ji cem xwe bigirtiba. Lê em vêya nakin.

**18.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, em heqîyê davêjin ser batilê û ew jî mêjîyê wî digire û parçe dike. (Tu dinêrî ku) batil tune bûye. Ji ber ew sifetên ku hûn lê tînin/nîsbetê wî (Allah) dikin xwelî li serê we be!

**19.** Her yekê li ser erd û asîman hene aîdê wî ne. Ew (melâîket) ên li cem wî ji îbadetkirina wî quretîyê nakin û ji têrbûnê/ji acizbûnê navberê nadin (îbadetê).

**20.** Bi şev û roj bi awayê bênavber wî tesbîh dikin.

**21.** Ma qey wan li ser rûyê erdê ji bo xwe (hinek) îlâhan girtine ku ew (mirîyan) sax bikin?

**22.** Eger (li erd û esmanan) ji Allah pê ve hin îlâhên din hebûna wê (pergala wan) xera bibûna. Ji ber sifetên ku lêhatîyê/nîsbetê wî dikin, Allahê ku Rabbê arşê ye ji wan munezzeh e.

**23.** Ew, ji kar û kirinên xwe nayê pirsyarkirin; lê ew tên pirsyarkirin.

**24.** Nexwe ji Allah pê ve ji bo xwe hinek îlâhên din girtine? Bibêje: “Delîlên xwe (yên ku tê de qet tu guman tune) bînin! Ha ev e; zikra/banga hevpar ya ligel min û yên berîya min. (Ka binêrin, ji xeynî îlâh girtina Allah pê ve tê de qet tu zikir/hînare/mesaj heye?)” Berevajî pirên wan bi heqîyê nizanin û berê xwe jê vedigerînin.

وَمَٓا اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ مِنْ رَسُولٍ اِلَّا نُوحٓى اِلَيْهِ اَنَّهُ
لَٓا اِلٰهَ اِلَّٓا اَنَا فَاعْبُدُونِ ﴿٢٥﴾ وَقَالُوا اتَّخَذَ الرَّحْمٰنُ وَلَدًا
سُبْحَانَهُ بَلْ عِبَادٌ مُكْرَمُونَ ﴿٢٦﴾ لَا يَسْبِقُونَهُ بِالْقَوْلِ
وَهُمْ بِاَمْرِه۪ يَعْمَلُونَ ﴿٢٧﴾ يَعْلَمُ مَا بَيْنَ اَيْد۪يهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ
وَلَا يَشْفَعُونَ اِلَّا لِمَنِ ارْتَضٰى وَهُمْ مِنْ خَشْيَتِه۪ مُشْفِقُونَ ﴿٢٨﴾
وَمَنْ يَقُلْ مِنْهُمْ اِنّ۪ٓي اِلٰهٌ مِنْ دُونِه۪ فَذٰلِكَ نَجْز۪يهِ جَهَنَّمَ كَذٰلِكَ
نَجْزِي الظَّالِم۪ينَ ﴿٢٩﴾ اَوَلَمْ يَرَ الَّذ۪ينَ كَفَرُٓوا اَنَّ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ كَانَتَا رَتْقًا فَفَتَقْنَاهُمَا وَجَعَلْنَا مِنَ الْمَٓاءِ
كُلَّ شَيْءٍ حَيٍّ اَفَلَا يُؤْمِنُونَ ﴿٣٠﴾ وَجَعَلْنَا فِي الْاَرْضِ رَوَاسِيَ
اَنْ تَم۪يدَ بِهِمْ وَجَعَلْنَا ف۪يهَا فِجَاجًا سُبُلًا لَعَلَّهُمْ يَهْتَدُونَ ﴿٣١﴾
وَجَعَلْنَا السَّمَٓاءَ سَقْفًا مَحْفُوظًا وَهُمْ عَنْ اٰيَاتِهَا مُعْرِضُونَ ﴿٣٢﴾
وَهُوَ الَّذ۪ي خَلَقَ الَّيْلَ وَالنَّهَارَ وَالشَّمْسَ وَالْقَمَرَ كُلٌّ
ف۪ي فَلَكٍ يَسْبَحُونَ ﴿٣٣﴾ وَمَا جَعَلْنَا لِبَشَرٍ مِنْ قَبْلِكَ
الْخُلْدَ اَفَائِنْ مِتَّ فَهُمُ الْخَالِدُونَ ﴿٣٤﴾ كُلُّ نَفْسٍ ذَٓائِقَةُ
الْمَوْتِ وَنَبْلُوكُمْ بِالشَّرِّ وَالْخَيْرِ فِتْنَةً وَاِلَيْنَا تُرْجَعُونَ ﴿٣٥﴾

**25.** Me berîya te tu pêxemberek ne şandîye ku me wiha lê wehîy nekiribe: "Bêguman ji min pê ve qet tu îlâh tune. Herwiha bi tenê îbadetê min/evdîtîya min bikin."

(Kelîmeya Tewhîdê ji du hevokên ku naveroka wan nefy (red) û îsbat (peyt) e pêk tê. Bi gotina "La îlâhe" hemû ulûhîyet tên red kirin û bi gotina "illallah" jî bi tenê ulûhîyeta Allah (ac) tê pejirandin/îsbatkirin. Îlâh çi ye? Îlâh, di îstilaha Qur'anê de tê/dihê vê maneyê ku "Ew ê îbadet lê tê kirin" e. Ji xeynî vê ayeta 25. ya sûreya Enbîya; ayetên 19/Meryem 81-82. û 43/Zuxrûf 45. jî îşaretê vê maneyê kirine. Yanê dema ku em dibêjin Lâilâheillallah, em vêya jî dipejirînin û dibêjin: "Ji Allah pê ve yê ku îbadetê heq dike qet tu heyîn tune û ez ê bi tenê îbadetê Allah bikim."

"Îlâh" wekî ku tê zenkirin bitenê nayê ser maneya yê dixuliqîne û yê riziq dide û yê vedijîne û yê dimirîne. Eger wisan bûna qet tu maneya dawetkirina muşrîkan li Kelîmeya Tewhîdê ne dima. Lewre li gorî van ayetan (Bnr.10/Yûnus, 31-32) wan digotin em bi van hemûyan bawer in. Lê wan îbadetên wekî dûa û nezir û tewafê ji xeynî Allah ji hin heyînên din re dikirin û didane pey wan rêveberên ku ji xeynî qanûnên Allah (ac) qanûnên beşerî çêdikirin/datanîn û gelên xwe bi van qanûnan bi rê ve dibirin. Bi vê awayî ji xeynî Allah (ac) îbadetê hin tiştên din dikin û ji Allah (ac) pê ji bo xwe wek îlâh digirtin/dipejirandin. (Bnr. 9/Tewbe, 31; 10/Yûnus, 18; 12/Yûsuf, 37-40))

**26.** Gotin: "Rahmân ji xwe re zarok girtîye!" Ew, ji hemû kêmasîyan munezzeh e. (Nexêr, ne wisan e! Ew melâîketên ku bi zaroktî nîsbetê Allah dikin) evdên (bi rûmet in û) gihîştine îkramê ne.

**27.** Bi peyvên xwe nakevin pêşîya wî û bi emrê wî tevdigerin.

**28.** Bi tiştên pêşîya wan jî û li dû wan jî dizane. Ji wan kesên ku ew (Allah) ji wan qayîl e/razî ye pê ve şefaetê li tu kesî nakin. Û qelbê wan ji ber xofa/ji ber tirsa wî direcifin/dilerizin.

(Di Qur'anê de ji bo têgeha Şefaetê bnr. 43/Zuxruf, 86.)

**29.** Ji nav wan her kî bibêje: "Ji xeynî Allah ez jî îlâhek im!" em yê wisan bi cehennemê ceza dikin. Em zaliman a wiha ceza dikin.

**30.** Erê ma ew ên kafir nabînin ku erd û esman berê bi hev ve bûn ku me ew ji hev kirin û me hemû zindîyan ji avê xuliqandin? Ma hê jî ew îmân naynin?

**31.** Ji bo ku wan nehejîne (û erd) xwe pê bigire me (çiyan) di erdê de çikandin. Ji bo ku rêyên xwe şaş nekin jî (di navbera wan çiyan de) rêyên fireh vekirin.

**32.** Me asîman jî (ji bo di ser wan de nekeve) kir banekî parastî). Wan, ji ayetên wî rû vegerandine.

**33.** Ew ê ku şev û roj û tav (roj) û hîv xuliqandîye ew e. Her yek ji wan di rêgeha xwe (ya diyarkirî) de diherike û diçe.

**34.** Me di berîya te de jî ebedîyet nedaye qet tu beşerekî! Digel ku tu bixwe jî bimirî ma ew ê baqî/mayînde bimînin?

**35.** Wê her nefs mirinê bitamine/biçêjîne. Em we bi şer û bi xêr îmtîhan dikin. Û hûn ê li me bên vegerandin.

وَاِذَا رَاٰكَ الَّذٖينَ كَفَرُوٓا اِنْ يَتَّخِذُونَكَ اِلَّا هُزُوًاۜ
اَهٰذَا الَّذٖى يَذْكُرُ اٰلِهَتَكُمْۚ وَهُمْ بِذِكْرِ الرَّحْمٰنِ هُمْ
كَافِرُونَ ﴿٣٦﴾ خُلِقَ الْاِنْسَانُ مِنْ عَجَلٍۜ سَاُرٖيكُمْ
اٰيَاتٖى فَلَا تَسْتَعْجِلُونِ ﴿٣٧﴾ وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا الْوَعْدُ
اِنْ كُنْتُمْ صَادِقٖينَ ﴿٣٨﴾ لَوْ يَعْلَمُ الَّذٖينَ كَفَرُوا حٖينَ
لَا يَكُفُّونَ عَنْ وُجُوهِهِمُ النَّارَ وَلَا عَنْ ظُهُورِهِمْ
وَلَا هُمْ يُنْصَرُونَ ﴿٣٩﴾ بَلْ تَأْتٖيهِمْ بَغْتَةً فَتَبْهَتُهُمْ
فَلَا يَسْتَطٖيعُونَ رَدَّهَا وَلَا هُمْ يُنْظَرُونَ ﴿٤٠﴾ وَلَقَدِ اسْتُهْزِئَ
بِرُسُلٍ مِنْ قَبْلِكَ فَحَاقَ بِالَّذٖينَ سَخِرُوا مِنْهُمْ مَا كَانُوا
بِهٖ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٤١﴾ قُلْ مَنْ يَكْلَؤُ۬كُمْ بِالَّيْلِ وَالنَّهَارِ
مِنَ الرَّحْمٰنِۜ بَلْ هُمْ عَنْ ذِكْرِ رَبِّهِمْ مُعْرِضُونَ ﴿٤٢﴾
اَمْ لَهُمْ اٰلِهَةٌ تَمْنَعُهُمْ مِنْ دُونِنَاۜ لَا يَسْتَطٖيعُونَ
نَصْرَ اَنْفُسِهِمْ وَلَا هُمْ مِنَّا يُصْحَبُونَ ﴿٤٣﴾ بَلْ مَتَّعْنَا هٰٓؤُ۬لَٓاءِ
وَاٰبَٓاءَهُمْ حَتّٰى طَالَ عَلَيْهِمُ الْعُمُرُۜ اَفَلَا يَرَوْنَ اَنَّا نَأْتِى
الْاَرْضَ نَنْقُصُهَا مِنْ اَطْرَافِهَاۜ اَفَهُمُ الْغَالِبُونَ ﴿٤٤﴾

**36.** Ew ên kafir dema ku te dibînin bitenê tinazê xwe bi te dikin. (Dibêjin) “Ew ê ku îlâhên we (dixe rojevê) û behsa (eybên) wan dike ev e? Hal ev e ku ew ên zikra/Kitêba Rahmân înkar dikin ew bixwe ne! (Digel vê yekê ji ber ku heyînên ji dar û keviran rexne dikir tinazê xwe bi Rasûlullah (ass) dikirin û wî şermezar dikirin/lome lê dikirin.)

**37.** Însan bi lezgînî/ji acele hatîye xuliqandin. Ez ê ayetên xwe nîşanî we bidim, nelezînin!

**38.** Dibêjin: “Eger hûn di gotina xwe de rast in ka ew (ezab) ê ku hûn (me) pê ditirsînin kengê ye? (Bila bê da ku em bibînin!)”

**39.** Ew ên kafir bi wê dema ku dê nikaribin rûyê xwe û pişta xwe ji ezabê biparêzin û alîkarî jî li wan nayê kirin, xwezî bizanibûna.

**40.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî ew (ezab) ji nîşka ve ji wan re tê û wan dixe rewşeke sergêjîyê ku êdî tiştekî fêm nakin. Êdî ew nikarin wê vegerînin û muhlet jî ji wan re nayê dayîn.

**41.** Sond be bi wan pêxemberên berîya te jî tinaz hatibû kirin. Ew (ezab) ê ku tinazê xwe pê dikirin ji her alî ve wan dorpêç kir.

**42.** Bibêje: “Kî dikare we şev û roj li dij Rahmân we biparêze? (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, wan ji zikra/ji Kitêba Rabbê xwe rû vegerandine.”

**43.** Nexwe qey hin îlâhên wan ên ku wan li dij me diparêzin hene? Ew nikarin alîkarîya xwe bixwe jî bikin. Ew ji alî me ve nayên parastin jî/ji me himaye jî nabînin.

**44.** (Nexêr, ne wisan e!) Me (li ser rûyê erdê) qencî li wan û kalanên wan kir û di xweşîyê de jiyaneke dirêj borandin (lê bi vê rewşê xapîyan). Erê ma ew nabînin ku em tên erdê û ji dora wê (bi îhsankirina fethên ji mumînan re) kêm dikin. (Digel alîkarîya me ya li ser mumînan) gelo ên bi ser bikevin ew in?

قُلْ اِنَّمَٓا اُنْذِرُكُمْ بِالْوَحْيِۘ وَلَا يَسْمَعُ الصُّمُّ الدُّعَٓاءَ
اِذَا مَا يُنْذَرُونَ ﴿٤٥﴾ وَلَئِنْ مَسَّتْهُمْ نَفْحَةٌ مِنْ عَذَابِ رَبِّكَ
لَيَقُولُنَّ يَا وَيْلَنَٓا اِنَّا كُنَّا ظَالِمِينَ ﴿٤٦﴾ وَنَضَعُ الْمَوَازِينَ
الْقِسْطَ لِيَوْمِ الْقِيٰمَةِ فَلَا تُظْلَمُ نَفْسٌ شَيْـًٔاۜ وَاِنْ كَانَ
مِثْقَالَ حَبَّةٍ مِنْ خَرْدَلٍ اَتَيْنَا بِهَاۜ وَكَفٰى بِنَا حَاسِبِينَ ﴿٤٧﴾
وَلَقَدْ اٰتَيْنَا مُوسٰى وَهٰرُونَ الْفُرْقَانَ وَضِيَٓاءً وَذِكْرًا لِلْمُتَّقِينَۙ ﴿٤٨﴾
اَلَّذِينَ يَخْشَوْنَ رَبَّهُمْ بِالْغَيْبِ وَهُمْ مِنَ السَّاعَةِ مُشْفِقُونَ ﴿٤٩﴾
وَهٰذَا ذِكْرٌ مُبَارَكٌ اَنْزَلْنَاهُۜ اَفَاَنْتُمْ لَهُ مُنْكِرُونَ ﴿٥٠﴾
وَلَقَدْ اٰتَيْنَٓا اِبْرٰهِيمَ رُشْدَهُ مِنْ قَبْلُ وَكُنَّا بِه۪ عَالِمِينَۚ ﴿٥١﴾
اِذْ قَالَ لِاَبِيهِ وَقَوْمِه۪ مَا هٰذِهِ التَّمَاث۪يلُ الَّت۪ٓي اَنْتُمْ لَهَا عَاكِفُونَ ﴿٥٢﴾
قَالُوا وَجَدْنَٓا اٰبَٓاءَنَا لَهَا عَابِد۪ينَ ﴿٥٣﴾ قَالَ لَقَدْ كُنْتُمْ
اَنْتُمْ وَاٰبَٓاؤُ۬كُمْ ف۪ي ضَلَالٍ مُب۪ينٍ ﴿٥٤﴾ قَالُٓوا اَجِئْتَنَا بِالْحَقِّ
اَمْ اَنْتَ مِنَ اللَّاعِب۪ينَ ﴿٥٥﴾ قَالَ بَلْ رَبُّكُمْ رَبُّ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ الَّذ۪ي فَطَرَهُنَّۘ وَاَنَا عَلٰى ذٰلِكُمْ مِنَ الشَّاهِد۪ينَ ﴿٥٦﴾
وَتَاللّٰهِ لَاَك۪يدَنَّ اَصْنَامَكُمْ بَعْدَ اَنْ تُوَلُّوا مُدْبِر۪ينَ ﴿٥٧﴾



**45.** Bibêje: “Ez bi tenê bi wehîyê we hişyar dikim. Lê ew ên ker (ên seh nakin) çi qasî bên hişyarkirin jî vê bangê nabihîzin.”

**46.** Eger ji ezabê Rabbê te tiştekî hindik jî bigihîje wan (qajeqajê dikin û) dibêjin: “Xwelî li serê me be, bi rastî em kesên zilimkar bûn.”

**47.** Em roja qiyametê mêzênên/terazîyên edaletê datînin. Li tu kesî neheqî nayê kirin. Eger bi qasî giranîya heba xerdelê (tiştekî bê qîmet) be jî em ê wê bînin. Ji hisab dîtine re em bes in.

**48.** Sond be, ji bo ku ji Mutteqîyan re bibe ronahî û şîret me Furqan (Tewrat) da Mûsa û Hârûn.

**49.** Ew in ku; di xeybê (cihên ku kes wan nabîne) de ji Rabbê xwe ditirsin û ji ber (xofa) qiyametê jî qelbê wan direcifin.

**50.** Ev (Qur'an), zikreke pîroz/mubarek e ku me nazil kiriye. Ma qey hûn ê ew înkar bikin?

**51.** Sond be hêj di berê de me rûşd (kamilbûn) dabû Îbrahîm. Me pê (bi demajoyên tekamûla wî) zanîbû.

**52.** (Îbrahîm) rojekî ji bavê xwe û ji qewmê xwe re wiha gotibû: “Ev peykerên ku hûn ji wan re îbadetê dikin çi ne?”

**53.** Gotin: “Me bav û kalên xwe li ser perestîya/îbadeta wan dîtin.”

**54.** Got: “Sond be ku; hûn jî û bav û kalên xwe jî di rêşaşîtîyekî eşkere de ne.”

**55.** Gotin: “Ma te ji me re heqîyê anî an jî tu henekê xwe bi me dikî?”

**56.** Got: “Nexêr, Rabbê we Rabbê erd û esmanan e û wan ji tunebûnê xuliqandîye. Ez jî li ser vêya ji wan ên şahidî didin im.”

**57.** “Qesem bi navê Allah ku; dema hûn vegerin herin ez ê karekî/pîlanekî bînim ser pûtên we.”

فَجَعَلَهُمْ جُذَاذًا اِلَّا كَبِيرًا لَهُمْ لَعَلَّهُمْ اِلَيْهِ يَرْجِعُونَ ﴿٥٨﴾
قَالُوا مَنْ فَعَلَ هٰذَا بِاٰلِهَتِنَٓا اِنَّهُ لَمِنَ الظَّالِمِينَ ﴿٥٩﴾
قَالُوا سَمِعْنَا فَتًى يَذْكُرُهُمْ يُقَالُ لَهُٓ اِبْرٰهِيمُ ﴿٦٠﴾ قَالُوا
فَأْتُوا بِهِ عَلٰٓى اَعْيُنِ النَّاسِ لَعَلَّهُمْ يَشْهَدُونَ ﴿٦١﴾
قَالُٓوا ءَاَنْتَ فَعَلْتَ هٰذَا بِاٰلِهَتِنَا يَٓا اِبْرٰهِيمُ ﴿٦٢﴾ قَالَ بَلْ فَعَلَهُ
كَبِيرُهُمْ هٰذَا فَسْـَٔلُوهُمْ اِنْ كَانُوا يَنْطِقُونَ ﴿٦٣﴾
فَرَجَعُٓوا اِلٰٓى اَنْفُسِهِمْ فَقَالُٓوا اِنَّكُمْ اَنْتُمُ الظَّالِمُونَ ﴿٦٤﴾
ثُمَّ نُكِسُوا عَلٰى رُؤُ۫سِهِمْ لَقَدْ عَلِمْتَ مَا هٰٓؤُلَٓاءِ يَنْطِقُونَ ﴿٦٥﴾
قَالَ اَفَتَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مَا لَا يَنْفَعُكُمْ شَيْـًٔا
وَلَا يَضُرُّكُمْ ﴿٦٦﴾ اُفٍّ لَكُمْ وَلِمَا تَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٦٧﴾ قَالُوا حَرِّقُوهُ وَانْصُرُٓوا اٰلِهَتَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ
فَاعِلِينَ ﴿٦٨﴾ قُلْنَا يَا نَارُ كُونِي بَرْدًا وَسَلَامًا عَلٰٓى اِبْرٰهِيمَ ﴿٦٩﴾
وَاَرَادُوا بِهِ كَيْدًا فَجَعَلْنَاهُمُ الْاَخْسَرِينَ ﴿٧٠﴾ وَنَجَّيْنَاهُ
وَلُوطًا اِلَى الْاَرْضِ الَّتِي بَارَكْنَا فِيهَا لِلْعَالَمِينَ ﴿٧١﴾ وَوَهَبْنَا
لَهُٓ اِسْحٰقَ وَيَعْقُوبَ نَافِلَةً وَكُلًّا جَعَلْنَا صَالِحِينَ ﴿٧٢﴾

**58.** Pûtê mezin ne têde (Îbrahîm,) hemû pûtan parçe parçe kir. Belkî (ji pûtê mezin bipirsin ka çi bûye û) şêwra xwe pê bikin.

**59.** Gotin: “Kî ev bi îlâhên me kiriye? Bêguman ew ji zaliman e.”

**60.** (Ji hev re) gotin: “Me bihîst ku xortek dev diavête wan! Navê wî Îbrahîm e."

**61.** Gotin: “Wî (bînin) cihekî ber çavê însanan, dibe ku (li ser ya ku vî karî wî kiriye) şahidîyê bike.”

**62.** Gotin: “Ma te ev tişt bi îlâhên me kiriye, ya Îbrahîm!”

**63.** (Nexêr, ne wekî ramana we ye!) Berevajî, (li gorî ku wiha saxlem maye ew pût) ê mezin vê tiştê kiriye. Eger dikarin bipeyivin ka ji wan (pûtan) bipirsin.”

**64.** Li ser vê yekê li nefsa xwe vegerîyan û (piştî fikirîn) wiha gotin: “Bêguman (ji ber îbadet kirina heyînên ku ne dipeyivin û ne jî xwe diparêzin) yên zalim hûn bixwe ne.”

**65.** Paşê dîsa berepaş vegerîyan (ser rewşa xwe ya berê) û gotin: “Sond be, tu jî dizanî ku evana napeyivin.”

**66.** Got: “Nexwe çima hûn dev ji Allah berdidin û ji wan tiştên ku kar û zerara wan nagihîje we re evdîtî/îbadet dikin?”

**67.** “Xwelî li serê we û ew ên ku hûn îbadetê wan dikin jî be! Hûn aqil nagirin?

**68.** Gotin: “Eger hûn dixwazin tiştekî pê bikin, wî bişewitînin û alîkarîya îlâhên xwe bikin.”

**69.** Me jî wiha got: “Hê agir! Ji Îbrahîm re hênik be û bi silamet be.”

**70.** Wan daxwaz kirin ku jê re kemîn deynin lê me ew kirin ji yên bi xusranê ketine.

**71.** Me wî û Lût (gihand) wî erdê ku me ew ji aleman re pîroz kiriye û me wan xelas kir.

**72.** Me Îshaq da wî û di ser de jî Yaqûb îhsanî wî kir û me her yekî ji wan kir ji salihan.

وَجَعَلْنَاهُمْ اَئِمَّةً يَهْدُونَ بِاَمْرِنَا وَاَوْحَيْنَٓا اِلَيْهِمْ فِعْلَ الْخَيْرَاتِ
وَاِقَامَ الصَّلٰوةِ وَاِيتَٓاءَ الزَّكٰوةِۚ وَكَانُوا لَنَا عَابِدِينَۙ ﴿٧٣﴾
وَلُوطًا اٰتَيْنَاهُ حُكْمًا وَعِلْمًا وَنَجَّيْنَاهُ مِنَ الْقَرْيَةِ الَّتِي
كَانَتْ تَعْمَلُ الْخَبَٓائِثَۜ اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمَ سَوْءٍ فَاسِقِينَۙ ﴿٧٤﴾
وَاَدْخَلْنَاهُ فِي رَحْمَتِنَاۜ اِنَّهُ مِنَ الصَّالِحِينَ ﴿٧٥﴾ وَنُوحًا
اِذْ نَادٰى مِنْ قَبْلُ فَاسْتَجَبْنَا لَهُ فَنَجَّيْنَاهُ وَاَهْلَهُ مِنَ الْكَرْبِ
الْعَظِيمِۚ ﴿٧٦﴾ وَنَصَرْنَاهُ مِنَ الْقَوْمِ الَّذِينَ كَذَّبُوا
بِاٰيَاتِنَاۜ اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمَ سَوْءٍ فَاَغْرَقْنَاهُمْ اَجْمَعِينَ ﴿٧٧﴾
وَدَاوُدَ وَسُلَيْمٰنَ اِذْ يَحْكُمَانِ فِي الْحَرْثِ اِذْ نَفَشَتْ فِيهِ
غَنَمُ الْقَوْمِۚ وَكُنَّا لِحُكْمِهِمْ شَاهِدِينَۙ ﴿٧٨﴾ فَفَهَّمْنَاهَا
سُلَيْمٰنَۚ وَكُلًّا اٰتَيْنَا حُكْمًا وَعِلْمًاۘ وَسَخَّرْنَا مَعَ دَاوُدَ
الْجِبَالَ يُسَبِّحْنَ وَالطَّيْرَۜ وَكُنَّا فَاعِلِينَ ﴿٧٩﴾ وَعَلَّمْنَاهُ صَنْعَةَ
لَبُوسٍ لَكُمْ لِتُحْصِنَكُمْ مِنْ بَاْسِكُمْۚ فَهَلْ اَنْتُمْ
شَاكِرُونَ ﴿٨٠﴾ وَلِسُلَيْمٰنَ الرِّيحَ عَاصِفَةً تَجْرِي بِاَمْرِهِٓ
اِلَى الْاَرْضِ الَّتِي بَارَكْنَا فِيهَاۜ وَكُنَّا بِكُلِّ شَيْءٍ عَالِمِينَ ﴿٨١﴾

**73.** Me ew bi emrê xwe kirin îmamên ku digihînin hîdayetê. Me ji wan re wehîy kir ku karên qenc/amelên bixêr bikin û nimêja xwe îqame/rasterast bikin û zekâtê bidin. Wan her ji me re îbadet/evdîtî dikirin.

**74.** Me hikum/hikmet û ilim da Lût. Me ew ji bajarekî (û ji ehlê wê derê) ku fiêlên kirêt/xebîs dikirin xelas kir. Bêguman ew, qewmekî ji fasiqan (pêkhatî) û xerab bûn.

**75.** Me ew xiste nav rahmeta xwe. Bêşik ew ji salihan bû.

**76.** Nûh jî (bi bîr bîne)! Wî berê de (ji Rabbê xwe re) dûa kiribû û me jî îcabetî dûayê wî kiribû. Me ew û ehlê wî ji tengezarîyeke mezin (ji tofanê) xelas kiribû.

**77.** Me ew li dij wî qewmê ku ayetên me înkar dikirin parast. Ew qewmekî xerab bûn û me wan hemûyan (di tofanê de) xeniqand.

**78.** Dawûd û Suleyman jî (bi bîr bîne)! Wê dema der barê çandinîya ku pez ketibûyê de hukim didan. Em li ser hukmê wan şahid bûn.

**79.** Me ew hikum (a biîsabet/licih) bi Suleyman dabû fêhmkirin. Me hikum/hikmet û ilim dabû her yek ji wan. Me çiyan û teyran xist bin emrê Dawûd da ku (pê re) tesbîh bikin. Yê (ku van) dikin em in.

**80.** Me çêkirina zirx hînî wî kir da ku (hûn bi wê zirxê) xwe di şer de biparêzin. Erê ma êdî hûn (ji van nîmetan re) ne şikurdar in?

**81.** Me ba (yên) bi jid jî (xist bin xizmeta) Suleyman. Bi emrê wî, ber bi ardê ku me bereket xistibûyê ve diherikî diçû. Em, zanayê her tiştî ne.

وَمِنَ الشَّيَاطِينِ مَنْ يَغُوصُونَ لَهُ وَيَعْمَلُونَ
عَمَلًا دُونَ ذٰلِكَۚ وَكُنَّا لَهُمْ حَافِظِينَۙ ﴿٨٢﴾ وَاَيُّوبَ
اِذْ نَادٰى رَبَّهُٓ اَنّي مَسَّنِيَ الضُّرُّ وَاَنْتَ اَرْحَمُ الرَّاحِمِينَۚ ﴿٨٣﴾
فَاسْتَجَبْنَا لَهُ فَكَشَفْنَا مَا بِهِ مِنْ ضُرٍّ وَاٰتَيْنَاهُ
اَهْلَهُ وَمِثْلَهُمْ مَعَهُمْ رَحْمَةً مِنْ عِنْدِنَا وَذِكْرٰى
لِلْعَابِدِينَ ﴿٨٤﴾ وَاِسْمٰعِيلَ وَاِدْرِيسَ وَذَا الْكِفْلِۜ كُلٌّ
مِنَ الصَّابِرِينَۚ ﴿٨٥﴾ وَاَدْخَلْنَاهُمْ فِي رَحْمَتِنَاۜ اِنَّهُمْ
مِنَ الصَّالِحِينَ ﴿٨٦﴾ وَذَا النُّونِ اِذْ ذَهَبَ مُغَاضِبًا فَظَنَّ
اَنْ لَنْ نَقْدِرَ عَلَيْهِ فَنَادٰى فِي الظُّلُمَاتِ اَنْ لَٓا اِلٰهَ اِلَّٓا
اَنْتَ سُبْحَانَكَۗ اِنّي كُنْتُ مِنَ الظَّالِمِينَۚ ﴿٨٧﴾
فَاسْتَجَبْنَا لَهُۙ وَنَجَّيْنَاهُ مِنَ الْغَمِّۜ وَكَذٰلِكَ نُنْجِي
الْمُؤْمِنِينَ ﴿٨٨﴾ وَزَكَرِيَّٓا اِذْ نَادٰى رَبَّهُ رَبِّ لَا تَذَرْنِي
فَرْدًا وَاَنْتَ خَيْرُ الْوَارِثِينَۚ ﴿٨٩﴾ فَاسْتَجَبْنَا لَهُۘ وَوَهَبْنَا
لَهُ يَحْيٰى وَاَصْلَحْنَا لَهُ زَوْجَهُۜ اِنَّهُمْ كَانُوا يُسَارِعُونَ
فِي الْخَيْرَاتِ وَيَدْعُونَنَا رَغَبًا وَرَهَبًاۜ وَكَانُوا لَنَا خَاشِعِينَ ﴿٩٠﴾

**82.** Hin şeytanên ku di karên din de diemilandin û noqavî dikirin jî (me xist bin emrê wî). Ji bo wan parêzvan/çavdêr em bûn.

**83.** Eyyûb jî (bi bîr bîne)! Dema ku wî ji Rabbê xwe re dûa kir (û wiha gotibû:) “Bêguman ev dert bi min girt/ji her alîyê ve ez dorpêç kirim û tu jî Rahîmtirê Rahîman/Erhamu'rrahîmîn î.”

**84.** Me jî îcabetî dûayên wî kir û tengezarîya li ser wî rakir. Me ji bal xwe ve rahmetek û ji bo wan ên (ji Allah re) îbadet dikin re bibe şîret, malbata wî û bi wî re qatekî din jî da wî.

**85.** Îsmaîl û Îdrîs û Zelkifl... Hemû jî ji sebirkeran bûn.

**86.** Me wan xistin nav rahmeta xwe. Bêşik ew ji salihan bûn.

**87.** Zennûn/xwedîyê masî jî (bi bîr bîne)! Dema wî bi hêrs (dev ji qewmê xwe berda û) çûbû, zendikir ku em ê wî nexin tengezarîyê. (Çaxê me wî bi hepsa zikê masî ceza kir) di nav tarîtîyan de wiha nîyaz kiribû: “Ji te pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune! Tu ji her kêmasîyan munezzeh/dûr î. Bêşik ez bûm ji zaliman.”

**88.** Me îcabetî (dûayê) wî kir û ji wê derdê/ji wê xemê xelas kir. Em mumînan ha wisan xelas dikin.

**89.** Zekerîya jî (bi bîr bîne)! Wî ji Rabbê xwe re wiha nîda kiribû: “Min tenê bi serê xwe nehêle. Tu herî bi xêrtirê warisan î.”

**90.** Me îcabetî dûayê wî kir û Yahya da wî û jina wî jî (ji nezayoktîyê) ediland/serast kir. Ew di xêran de pêşbazî dikirin û bi daxwazî û bi xof ji me re dûa dikirin û li dij me ehlê hurmetê û sertewandî bûn.

وَالَّت۪ٓي اَحْصَنَتْ فَرْجَهَا فَنَفَخْنَا ف۪يهَا مِنْ رُوحِنَا
وَجَعَلْنَاهَا وَابْنَهَٓا اٰيَةً لِلْعَالَم۪ينَ ﴿٩١﴾ اِنَّ هٰذِه۪ٓ اُمَّتُكُمْ
اُمَّةً وَاحِدَةًۘ وَاَنَا رَبُّكُمْ فَاعْبُدُونِ ﴿٩٢﴾ وَتَقَطَّعُٓوا
اَمْرَهُمْ بَيْنَهُمْۜ كُلٌّ اِلَيْنَا رَاجِعُونَ ﴿٩٣﴾ فَمَنْ
يَعْمَلْ مِنَ الصَّالِحَاتِ وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَلَا كُفْرَانَ
لِسَعْيِه۪ۚ وَاِنَّا لَهُ كَاتِبُونَ ﴿٩٤﴾ وَحَرَامٌ عَلٰى قَرْيَةٍ
اَهْلَكْنَاهَٓا اَنَّهُمْ لَا يَرْجِعُونَ ﴿٩٥﴾ حَتّٰٓى اِذَا فُتِحَتْ
يَأْجُوجُ وَمَأْجُوجُ وَهُمْ مِنْ كُلِّ حَدَبٍ يَنْسِلُونَ ﴿٩٦﴾
وَاقْتَرَبَ الْوَعْدُ الْحَقُّ فَاِذَا هِيَ شَاخِصَةٌ اَبْصَارُ الَّذ۪ينَ
كَفَرُواۜ يَا وَيْلَنَا قَدْ كُنَّا ف۪ي غَفْلَةٍ مِنْ هٰذَا
بَلْ كُنَّا ظَالِم۪ينَ ﴿٩٧﴾ اِنَّكُمْ وَمَا تَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
حَصَبُ جَهَنَّمَۜ اَنْتُمْ لَهَا وَارِدُونَ ﴿٩٨﴾ لَوْ كَانَ
هٰٓؤُ۬لَٓاءِ اٰلِهَةً مَا وَرَدُوهَاۜ وَكُلٌّ ف۪يهَا خَالِدُونَ ﴿٩٩﴾ لَهُمْ
ف۪يهَا زَف۪يرٌ وَهُمْ ف۪يهَا لَا يَسْمَعُونَ ﴿١٠٠﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ
سَبَقَتْ لَهُمْ مِنَّا الْحُسْنٰىۙ اُو۬لٰٓئِكَ عَنْهَا مُبْعَدُونَۙ ﴿١٠١﴾

**91.** Me ji rohê xwe pif kiriye wê ya ku îffeta xwe parastîye (Meryem). Me ew û kurê wî ji bo aleman kir ayet.

**92.** Bi rastî ev ummeta we, yek ummetek tenê (ummeta îslâmê) ye. Ez jî Rabbê we me. (Nexwe) ji min re îbadet bikin.

**93.** Wan karên xwe/dînê xwe di navbera xwe de kirin parçe parçe/ketin îxtîlafê. Lê ew hemû wê li me vegerin.

**94.** Her kî jî wek mumîn amelên salih bike, ji keda wî re nankorî tune/berdêla ku heq kiriye wê bistîne. Bêşik em jê re nivîsvan in.

**95.** Ji bo (xelkên) welatekî ku me helak kiribe re êdî ne mimkûn e ku (li dij emrê me li ber xwe bidin û li me) nevegerin.

**96.** Dema ku (benda) Ye'cûc û Me'cûc vedibe, êdî ji her derî êrîş dikin.

**97.** Dema weada heq/qiyamet nêz bûye. (Çaxê ku ew pêk tê) çavê kafiran beloq dibin (û dibêjin:) "Xwelî li serê me be! Bi rastî em ji vêya di xefletê de bûn. (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, em zalim bûn."

**98.** Bêguman hûn û ew ên ku we ji xeynî Allah dihebandin/îbadet li wan dikirin, şewatekê/ardûyê cehennemê ne. Hûn ê têkevin wê derê.

**99.** (Wekî ku hûn îdîa dikin) bi rastî eger ew îlâh bûna, nediketin wê derê. Û ew hemû wê di wir de bêdawî bimînin.

**100.** Li wê derê ji wan re bêhn sitendineke bi zorahî/nalîn û zarîn heye. Û li wê derê nabihîzin jî.

**101.** Bêşik ew ên ku me ji bo wan peymana xweşîyê daye; ew dê ji cehennemê bên dûrkirin.

(Yanê; mirovên salih û melâîket û pêxember ên ku muşrîkan perestîyê ji wan re dikirin dê nebin ardûyê cehennemê. Lewre ev ên têne rêzkirin, ew in ku muşrîkan berî wan û digel nerazîbûna wan perestî ji wan re kirine. Bnr. 5/Maîde, 116-117; 34/Sebe', 40-41)

لَا يَسْمَعُونَ حَسٖيسَهَاۚ وَهُمْ فٖى مَا اشْتَهَتْ اَنْفُسُهُمْ خَالِدُونَۚ ﴿١٠٢﴾
لَا يَحْزُنُهُمُ الْفَزَعُ الْاَكْبَرُ وَتَتَلَقّٰيهُمُ الْمَلٰٓئِكَةُۜ هٰذَا
يَوْمُكُمُ الَّذٖى كُنْتُمْ تُوعَدُونَ ﴿١٠٣﴾ يَوْمَ نَطْوِى السَّمَٓاءَ
كَطَيِّ السِّجِلِّ لِلْكُتُبِۜ كَمَا بَدَاْنَٓا اَوَّلَ خَلْقٍ نُعٖيدُهُۜ
وَعْدًا عَلَيْنَاۜ اِنَّا كُنَّا فَاعِلٖينَ ﴿١٠٤﴾ وَلَقَدْ كَتَبْنَا فِى الزَّبُورِ
مِنْ بَعْدِ الذِّكْرِ اَنَّ الْاَرْضَ يَرِثُهَا عِبَادِىَ الصَّالِحُونَ ﴿١٠٥﴾
اِنَّ فٖى هٰذَا لَبَلَاغًا لِقَوْمٍ عَابِدٖينَۜ ﴿١٠٦﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَاكَ
اِلَّا رَحْمَةً لِلْعَالَمٖينَ ﴿١٠٧﴾ قُلْ اِنَّمَا يُوحٰٓى اِلَيَّ اَنَّمَٓا اِلٰهُكُمْ
اِلٰهٌ وَاحِدٌۚ فَهَلْ اَنْتُمْ مُسْلِمُونَ ﴿١٠٨﴾ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَقُلْ اٰذَنْتُكُمْ
عَلٰى سَوَٓاءٍۜ وَاِنْ اَدْرٖٓى اَقَرٖيبٌ اَمْ بَعٖيدٌ مَا تُوعَدُونَ ﴿١٠٩﴾
اِنَّهُ يَعْلَمُ الْجَهْرَ مِنَ الْقَوْلِ وَيَعْلَمُ مَا تَكْتُمُونَ ﴿١١٠﴾
وَاِنْ اَدْرٖى لَعَلَّهُ فِتْنَةٌ لَكُمْ وَمَتَاعٌ اِلٰى حٖينٍ ﴿١١١﴾ قَالَ رَبِّ احْكُمْ
بِالْحَقِّۜ وَرَبُّنَا الرَّحْمٰنُ الْمُسْتَعَانُ عَلٰى مَا تَصِفُونَ ﴿١١٢﴾

## سُورَةُ الْحَجِّ

مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانٍ وَسَبْعُونَ اٰيَةً

**102.** Ew gurîna/qîjîna wê (agirê jî) nabihîzin. Di nava nîmetên ku dilê wan xwestîye de wê ebedî bimînin.

**103.** Ew tirsa mezin (ew tirsa dema vejîn û heşrê de) jî wan xemgîn nake. Melâîket wan pêşwazî dikin û wiha dibêjin: “Ev, roja ku ji we re hatibû weadkirin e.”

**104.** Ew roj, wekî ku rûpela pirtûkê tê pêçan em asîman dipêçin. Me çawa cara pêşîn xuliqandîye, em (mexluqatê) dîsa vedigerînin rewşa ewwil. Ev weadeke li ser me ye. Muheqeq em ê (vêya) bikin.

**105.** Sond be ku di piştî Zikrê (Tewratê) di Zebûrê de jî me wiha nivîsandibû: “Bêguman wê evdên min ên salih li ser rûyê erdê bibin waris.”

**106.** Bêşik ji bo qewmekî ku îbadet dikin re di vê (Qur'anê) de agahî/belge/şîret/rêbaz ên ku digihînin armancê heye.

**107.** Me tu ji hemû aleman re bitenê wek rahmet şandîye.

**108.** Bibêje: “Ji min re wiha tê wehîykirin ku ‘Îlâhê we enceq yek îlâhek e’. Ma hûn ê bibin ji muslîm ên (ku şirkê terk dikin û li ser tewhîdê) berê xwe didin Allah?”

**109.** Eger rû vegerînin bibêje: “Min bi wekhevî/bê cudayî we hemûyan hişyar kir. Êdî ez nizanim ew tiştê ku wead li we hatîye kirin dûr e an nêzîk e.”

**110.** “Bêguman ew, bi gotina eşkere jî û ya ku hûn vedişêrin jî dizane.”

**111.** “Ez nizanim, dibe ku ev (nediyarîbûna dema vê ezaba ku hûn pê hatine tehdîtkirin), ji we re fitneyek be an jî dibe ku heta demeke diyarkirî xweşîyek be.”

**112.** Got: “Rabbê min! Bi heqî hikum bide. Rabbê me, yê Rahmân e û li hember wan lihevanînên we (ew ê ku alîkarî jê tê xwestin) Mustean e.”



## 22. SÛREYA HECC

*(Ekserîyeta ayetên sûreya Hecc li Mekkeyê, çend ayetên wê jî li Medîneyê nazil bûye. Bi vê taybetîya xwe sûreya Hecc hem Mekkî hem jî Medenî ye. Heftê û heşt (78) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya bîst û duyemîn e. Sûre behsa heccê dike û wek sûreya Hecc hatîye binav kirin. Di dirêjahîya sûreya Hecc de erjengîya roja qiyametê û sehneyên ku di roja qiyametê de tên/dihên jîyîn û cîhad û pêxemberên wekî Îbrahîm û Lût (asm) û qûrban û qewmên Ad û Semûd tên vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim).*

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا رَبَّكُمْۚ اِنَّ زَلْزَلَةَ السَّاعَةِ شَيْءٌ
عَظ۪يمٌ ١ يَوْمَ تَرَوْنَهَا تَذْهَلُ كُلُّ مُرْضِعَةٍ عَمَّٓا اَرْضَعَتْ
وَتَضَعُ كُلُّ ذَاتِ حَمْلٍ حَمْلَهَا وَتَرَى النَّاسَ سُكَارٰى
وَمَا هُمْ بِسُكَارٰى وَلٰكِنَّ عَذَابَ اللّٰهِ شَد۪يدٌ ٢ وَمِنَ النَّاسِ
مَنْ يُجَادِلُ فِي اللّٰهِ بِغَيْرِ عِلْمٍ وَيَتَّبِعُ كُلَّ شَيْطَانٍ مَر۪يدٍۙ ٣
كُتِبَ عَلَيْهِ اَنَّهُ مَنْ تَوَلَّاهُ فَاَنَّهُ يُضِلُّهُ وَيَهْد۪يهِ اِلٰى عَذَابِ
السَّع۪يرِ ٤ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنْ كُنْتُمْ ف۪ي رَيْبٍ مِنَ الْبَعْثِ
فَاِنَّا خَلَقْنَاكُمْ مِنْ تُرَابٍ ثُمَّ مِنْ نُطْفَةٍ ثُمَّ مِنْ عَلَقَةٍ ثُمَّ
مِنْ مُضْغَةٍ مُخَلَّقَةٍ وَغَيْرِ مُخَلَّقَةٍ لِنُبَيِّنَ لَكُمْۜ وَنُقِرُّ
فِي الْاَرْحَامِ مَا نَشَٓاءُ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّى ثُمَّ نُخْرِجُكُمْ
طِفْلًا ثُمَّ لِتَبْلُغُٓوا اَشُدَّكُمْۚ وَمِنْكُمْ مَنْ يُتَوَفّٰى
وَمِنْكُمْ مَنْ يُرَدُّ اِلٰٓى اَرْذَلِ الْعُمُرِ لِكَيْلَا يَعْلَمَ
مِنْ بَعْدِ عِلْمٍ شَيْـًٔاۜ وَتَرَى الْاَرْضَ هَامِدَةً فَاِذَٓا اَنْزَلْنَا عَلَيْهَا
الْمَٓاءَ اهْتَزَّتْ وَرَبَتْ وَاَنْبَتَتْ مِنْ كُلِّ زَوْجٍ بَه۪يجٍ ٥

**1.** Gelî însanan! Ji Rabbê xwe bitirsin û xwe biparêzin. Bêguman zelzela/erdhêja qiyametê tiştekî pir mezin e.

**2.** Roja ku hûn wê bibînin; her dayîka şîrdar, ya ku dimêjîne ji bîr dike û hemla her jina biheml ji ber diçe û tu însanan di rewşa sexweş de dibînî; hal ev e ku ew, ne serxweş in. Lê belê ezabê Allah pir dijwar e.

**3.** Ji însanan hin kes hene ku der heqê Allah de bi nezanî nîqaş dikin û didin pey her şeytanên rikdar.

**4.** Der heqê wî de ev (hukim) hatîye dayîn/nivîsandin: "Kî wî ji xwe re dost bigire ew (şeytan) wî dixerifîne û berê wî dide ber bi agirê har ve."

**5.** Gelî însanan! Eger hûn ji vejandinê (ya piştî mirinê) di gumanê de ne; (bizanibin ku) bêşik me hûn ji axê xuliqandîye. Ji bo em ji we re beyan bikin (da ku ew ê van kiriye, qadirê vejandina ji nû ve ye jî) piştre ji dilopek av û paşê ji xwîna meyandî (ji elaq/ji embriyo) û paşê ji parçeyek goşt ku xuliqandina wê diyar nediyar e... Em ya daxwaz bikin di malzarokan/di rahîman de digirin. Paşê em we wek dergûş/şîrmij (bebek) ji wir derdixin û paşê jî ji bo ku hûn bibin gihaştî/gihîyayî (em umir didin we). Ji we hinek dimirin û hinek jî di piştî zanîn (û hîn bûnê) bi tiştekî nizanibe û vegere, em wî digihînin dema ketinê. Tu erdê hişk û hola dibînî lê dema em avê di ser de dibarînin (pêşî) dilerize û (paşê) hildipeke û ji her hêşînahîyan cotên dilkêş derdixe.

ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ هُوَ الْحَقُّ وَاَنَّهُ يُحْيِ الْمَوْتٰى وَاَنَّهُ عَلٰى كُلِّ
شَيْءٍ قَد۪يرٌۙ ﴿٦﴾ وَاَنَّ السَّاعَةَ اٰتِيَةٌ لَا رَيْبَ ف۪يهَاۙ وَاَنَّ اللّٰهَ يَبْعَثُ
مَنْ فِي الْقُبُورِ ﴿٧﴾ وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يُجَادِلُ فِي اللّٰهِ بِغَيْرِ عِلْمٍ
وَلَا هُدًى وَلَا كِتَابٍ مُن۪يرٍۙ ﴿٨﴾ ثَانِيَ عِطْفِه۪ لِيُضِلَّ عَنْ سَب۪يلِ اللّٰهِۜ
لَهُ فِي الدُّنْيَا خِزْيٌ وَنُذ۪يقُهُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ عَذَابَ الْحَر۪يقِ ﴿٩﴾
ذٰلِكَ بِمَا قَدَّمَتْ يَدَاكَ وَاَنَّ اللّٰهَ لَيْسَ بِظَلَّامٍ لِلْعَب۪يدِۚ ﴿١٠﴾
وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يَعْبُدُ اللّٰهَ عَلٰى حَرْفٍۚ فَاِنْ اَصَابَهُ خَيْرٌۨ اطْمَاَنَّ
بِه۪ۚ وَاِنْ اَصَابَتْهُ فِتْنَةٌۨ انْقَلَبَ عَلٰى وَجْهِه۪ۗ خَسِرَ الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةَۜ
ذٰلِكَ هُوَ الْخُسْرَانُ الْمُب۪ينُ ﴿١١﴾ يَدْعُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ
مَا لَا يَضُرُّهُ وَمَا لَا يَنْفَعُهُۜ ذٰلِكَ هُوَ الضَّلَالُ الْبَع۪يدُ ﴿١٢﴾ يَدْعُوا
لَمَنْ ضَرُّهُٓ اَقْرَبُ مِنْ نَفْعِه۪ۜ لَبِئْسَ الْمَوْلٰى وَلَبِئْسَ الْعَش۪يرُ ﴿١٣﴾
اِنَّ اللّٰهَ يُدْخِلُ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ جَنَّاتٍ تَجْر۪ي
مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُۜ اِنَّ اللّٰهَ يَفْعَلُ مَا يُر۪يدُ ﴿١٤﴾ مَنْ كَانَ يَظُنُّ
اَنْ لَنْ يَنْصُرَهُ اللّٰهُ فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِ فَلْيَمْدُدْ بِسَبَبٍ
اِلَى السَّمَٓاءِ ثُمَّ لْيَقْطَعْ فَلْيَنْظُرْ هَلْ يُذْهِبَنَّ كَيْدُهُ مَا يَغ۪يظُ ﴿١٥﴾

**6.** Allah (van tiştan kir) lewre ew, (çavkanîya/menbaa heq û heqîqetê) Heq û yê ku mirîyan divejîne û qadirê her tiştî ye.

**7.** Bi rastî wê qiyamet rabe, di wê de qet tu şubhe tune. Bêguman Allah, wan ên di goran de wê bivejîne.

**8.** Ji însanan hin kes hene ku der heqê Allah de bê zanîn û bê hîdayet/bê rehber û bê Kitêbeke ronahîker nîqaş dikin.

**9.** Ji bo (însanan) ji rêya Allah vegerîne di rewşeke bi quretî û ji xwe razî vêya dike. Jî wî re li dinyayê riswatî heye. Li axîretê jî em ezabekî şewate pê ditamînin.

**10.** Tiştên ku destên te (pêk anîye) teqdîm kiriye, ev in. Bêguman Allah ji evdên xwe re ne zilimkar e.

**11.** Ji însanan hin kes hene ku îbadetekî ne ji dil (bi gumanbarî û pîyê wî erd negirtî) ji Allah re dikin. Eger xêrek bigihîje wî, bi wê mutmeîn dibe. Lê eger fitneyek/îmtîhanek bigihîje wî, ew ser rû tê vegerandin (dizivire ser rewşa xwe ya berê). Ew dinyayê jî û axîretê jî winda dike. Ha ev, xesareta eşkere bixwe ye.

**12.** Ew dev ji Allah berdide û ji wî yê ku ne dikare zerarekî an jî feydeyekî bide wî re dûa/lavahî dike. Xerifîya kûr ev bixwe ye.

**13.** Ew, lavahîya wî (tiştê) dike ku zerara wî ji feydeya wî nêzîktir e. Ew, çi dostekî xerab û çi hevalekî nebaş e.

**14.** Bêguman Allah ew ên îman anîne û amelên salih kirine dixe cennetên ku di binî de çem diherikin. Bêşik Allah, her çi bivê wê dike.

**15.** Çi kesê guman bike ku Allah li dinya û li axîretê wê alîkarîya wî (pêxember) neke bila bi amrazekê/bi navgîntekê bigire û bi bal asîman ve hilkişe, paşê bila (alîkarîya ku ji asîman ve tê) bibire. (Piştre) bila binêre, gelo ev çareserîya ku dîtîye hêrsa wî ya (ji îslâm û pêxember re) ji holê radike?

وَكَذٰلِكَ اَنْزَلْنَاهُ اٰيَاتٍ بَيِّنَاتٍ وَاَنَّ اللّٰهَ يَهْدٖى
مَنْ يُرٖيدُ ﴿١٦﴾ اِنَّ الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَالَّذٖينَ هَادُوا وَالصَّابِـٖٔينَ
وَالنَّصَارٰى وَالْمَجُوسَ وَالَّذٖينَ اَشْرَكُوا اِنَّ اللّٰهَ يَفْصِلُ
بَيْنَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ شَهٖيدٌ ﴿١٧﴾
اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ يَسْجُدُ لَهُ مَنْ فِى السَّمٰوَاتِ وَمَنْ فِى الْاَرْضِ
وَالشَّمْسُ وَالْقَمَرُ وَالنُّجُومُ وَالْجِبَالُ وَالشَّجَرُ وَالدَّوَٓابُّ
وَكَثٖيرٌ مِنَ النَّاسِ وَكَثٖيرٌ حَقَّ عَلَيْهِ الْعَذَابُ وَمَنْ يُهِنِ اللّٰهُ
فَمَا لَهُ مِنْ مُكْرِمٍ اِنَّ اللّٰهَ يَفْعَلُ مَا يَشَٓاءُ ﴿١٨﴾ هٰذَانِ
خَصْمَانِ اخْتَصَمُوا فٖى رَبِّهِمْ فَالَّذٖينَ كَفَرُوا قُطِّعَتْ لَهُمْ
ثِيَابٌ مِنْ نَارٍ يُصَبُّ مِنْ فَوْقِ رُؤُسِهِمُ الْحَمٖيمُ ﴿١٩﴾ يُصْهَرُ
بِهٖ مَا فٖى بُطُونِهِمْ وَالْجُلُودُ ﴿٢٠﴾ وَلَهُمْ مَقَامِعُ مِنْ حَدٖيدٍ ﴿٢١﴾
كُلَّمَٓا اَرَادُٓوا اَنْ يَخْرُجُوا مِنْهَا مِنْ غَمٍّ اُعٖيدُوا فٖيهَا
وَذُوقُوا عَذَابَ الْحَرٖيقِ ﴿٢٢﴾ اِنَّ اللّٰهَ يُدْخِلُ الَّذٖينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ جَنَّاتٍ تَجْرٖى مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ يُحَلَّوْنَ
فٖيهَا مِنْ اَسَاوِرَ مِنْ ذَهَبٍ وَلُؤْلُؤًا وَلِبَاسُهُمْ فٖيهَا حَرٖيرٌ ﴿٢٣﴾




**16.** Herwiha me ev Qur'an bi ayetên eşkere nazil kiriye. Bêguman Allah kî bixwaze wî hîdayet dike.

**17.** Bi rastî Allah roja qiyametê di navbera mumînan û cihûyan û sabiîyan û filleyan û muşrîkan de wê hukmê xwe bide. Bêşik Allah li ser her tiştî şahid e.

**18.** Ma qey te nedît? Hemû tiştên li erd û esmanan; roj û hîv û stêrk û çiyan û dar û heywan û pirên însanan ji Allah re secde dikin. Li ser gelekan jî ezab heq bûye. Allah her kî bêrûmet bike û kêm bixîne, êdî tu kes tune ku wî rêzdar bike. Bêguman Allah, ya ku divê dike.

**19.** Evana du dijmin in ku der heqê Rabbê xwe de nîqaş dikin. (Ji van herduyan) ji bo ew ên kafir re cilên ji agir hatine dirûtin. Di ser serê wan de jî ava kelandî tê rijandin.

**20.** Bi vê (ava kelandî) tiştên di nava zikê wan de û çermê wan tên helandin.

**21.** Ji wan re şivên hesinî (yên amadekirî) hene.

**22.** Ji bo ku ji derda/xema wê derê (xelas bibin) her cara ku dixwazin ji wir derkevin, ber bi wê de têne vegerandin û (ji wan re tê gotin): “Dê ezaba şewatok bitamînin.”

**23.** Bêguman Allah, wan ên îmân anîne û amelên salih kirine jî dixe cennetên di binî de çem diherikin. Li wir bi bazinên ji zêr û ji durr/ji lûlû dixemilin û libasên wan jî ji hevrîşim e.

وَهُدُٓوا اِلَى الطَّيِّبِ مِنَ الْقَوْلِۚ وَهُدُٓوا اِلٰى صِرَاطِ الْحَم۪يدِ ﴿٢٤﴾
اِنَّ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا وَيَصُدُّونَ عَنْ سَب۪يلِ اللّٰهِ
وَالْمَسْجِدِ الْحَرَامِ الَّذ۪ي جَعَلْنَاهُ لِلنَّاسِ سَوَٓاءًۨ الْعَاكِفُ
ف۪يهِ وَالْبَادِۜ وَمَنْ يُرِدْ ف۪يهِ بِاِلْحَادٍ بِظُلْمٍ نُذِقْهُ
مِنْ عَذَابٍ اَل۪يمٍ۟ ﴿٢٥﴾ وَاِذْ بَوَّاْنَا لِاِبْرٰه۪يمَ مَكَانَ الْبَيْتِ
اَنْ لَا تُشْرِكْ ب۪ي شَيْـًٔا وَطَهِّرْ بَيْتِيَ لِلطَّٓائِف۪ينَ
وَالْقَٓائِم۪ينَ وَالرُّكَّعِ السُّجُودِ ﴿٢٦﴾ وَاَذِّنْ فِي النَّاسِ
بِالْحَجِّ يَأْتُوكَ رِجَالًا وَعَلٰى كُلِّ ضَامِرٍ يَأْت۪ينَ مِنْ كُلِّ
فَجٍّ عَم۪يقٍۙ ﴿٢٧﴾ لِيَشْهَدُوا مَنَافِعَ لَهُمْ وَيَذْكُرُوا اسْمَ اللّٰهِ
ف۪ٓي اَيَّامٍ مَعْلُومَاتٍ عَلٰى مَا رَزَقَهُمْ مِنْ بَه۪يمَةِ الْاَنْعَامِۚ
فَكُلُوا مِنْهَا وَاَطْعِمُوا الْبَٓائِسَ الْفَق۪يرَۘ ﴿٢٨﴾ ثُمَّ لْيَقْضُوا
تَفَثَهُمْ وَلْيُوفُوا نُذُورَهُمْ وَلْيَطَّوَّفُوا بِالْبَيْتِ الْعَت۪يقِ ﴿٢٩﴾
ذٰلِكَۗ وَمَنْ يُعَظِّمْ حُرُمَاتِ اللّٰهِ فَهُوَ خَيْرٌ لَهُ عِنْدَ رَبِّه۪ۜ
وَاُحِلَّتْ لَكُمُ الْاَنْعَامُ اِلَّا مَا يُتْلٰى عَلَيْكُمْ فَاجْتَنِبُوا
الرِّجْسَ مِنَ الْاَوْثَانِ وَاجْتَنِبُوا قَوْلَ الزُّورِۙ ﴿٣٠﴾

**24.** Ew bal bi gotinên herî xweşik û bal bi wî yê hamîd/pesinandî ve hatine rasterêkirin.

**25.** Bêguman ew ên bûne kafir û ji rêya Allah û ji Mescîdu'l Heram a ku me ji hemû mirovên binkî/niştecih û yên ji derve tên re wekhev (pîroz) kiriye, xelkê men dikin (helak bûne). Kî jî averêkirinê û zilimkarîyê daxwaz bike em ê ezabekî biêş û jan pê bitamînin.

**26.** Bi bîr bîne! Dema ku me cihê Beytê/Kâ'beyê nîşanî Îbrahîm dabû û (me wiha wehîy kiribû): "Qet tu tiştekî ji min re neke şirîk. Mala min/Beyta min ji bo tewafkeran û qaîman (yên qiyam dikin) û rukûvanan û secdebiran re paqij bike. "

**27.** "Di nava însanan de îlana heccê bike. Peyatî/bi meş û (ji ber rêwingîya dirêj) li ser siwarên betilandî, bila ji rêyên dûr werin cem te."

**28.** (Bila bi gazîya te werin heccê da ku;) li ser berjewendîya/menfaeta ji bo xwe bibin şahid. (Wekî din) bila li ser heywanên (ji bo qurbanê) ku wan riziqandîye/daye wan di rojên diyarkirî de navê Allah zikir bikin. Ji wan bixwin bi feqîrên di tengezarîyê de mane jî bidin xwarin.

**29.** Paşê (bi qusandina por û neynûk û simbêlên xwe) qirêjên xwe paqij bikin û nezrên xwe bi cih bînin û Beyti'l Atîk/Mala Azad tewaf bikin.

**30.** Ha wisan... Her kî şîarên/hurûmatên Allah (tiştên ku Allah parastin û çavnêrîya wan daxwaz kiriye) berz/rûmetdar bike ev, jê re li cem Rabbê wî ya herî bixêrtir e. Ew ên ku (herambûna wan) ji we re hatîye xwendin ne tê de, heywanên din ji we re hatîye helal kirin. Xwe ji wan pûtên necis biparêzin! Ji peyva derew jî dûr bimînin.

حُنَفَٓاءَ لِلّٰهِ غَيْرَ مُشْرِك۪ينَ بِه۪ۜ وَمَنْ يُشْرِكْ بِاللّٰهِ فَكَاَنَّمَا خَرَّ
مِنَ السَّمَٓاءِ فَتَخْطَفُهُ الطَّيْرُ اَوْ تَهْو۪ي بِهِ الرّ۪يحُ ف۪ي مَكَانٍ سَح۪يقٍ ٣١
ذٰلِكَۗ وَمَنْ يُعَظِّمْ شَعَٓائِرَ اللّٰهِ فَاِنَّهَا مِنْ تَقْوَى الْقُلُوبِ ٣٢
لَكُمْ ف۪يهَا مَنَافِعُ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّى ثُمَّ مَحِلُّهَٓا اِلَى الْبَيْتِ
الْعَت۪يقِ ٣٣ وَلِكُلِّ اُمَّةٍ جَعَلْنَا مَنْسَكًا لِيَذْكُرُوا اسْمَ اللّٰهِ
عَلٰى مَا رَزَقَهُمْ مِنْ بَه۪يمَةِ الْاَنْعَامِۜ فَاِلٰهُكُمْ اِلٰهٌ وَاحِدٌ فَلَهُٓ
اَسْلِمُواۜ وَبَشِّرِ الْمُخْبِت۪ينَۙ ٣٤ اَلَّذ۪ينَ اِذَا ذُكِرَ اللّٰهُ وَجِلَتْ قُلُوبُهُمْ
وَالصَّابِر۪ينَ عَلٰى مَٓا اَصَابَهُمْ وَالْمُق۪يمِي الصَّلٰوةِۙ وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ
يُنْفِقُونَ ٣٥ وَالْبُدْنَ جَعَلْنَاهَا لَكُمْ مِنْ شَعَٓائِرِ اللّٰهِ لَكُمْ
ف۪يهَا خَيْرٌۗ فَاذْكُرُوا اسْمَ اللّٰهِ عَلَيْهَا صَوَٓافَّۚ فَاِذَا وَجَبَتْ جُنُوبُهَا
فَكُلُوا مِنْهَا وَاَطْعِمُوا الْقَانِعَ وَالْمُعْتَرَّۜ كَذٰلِكَ سَخَّرْنَاهَا
لَكُمْ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ٣٦ لَنْ يَنَالَ اللّٰهَ لُحُومُهَا وَلَا دِمَٓاؤُ۬هَا
وَلٰكِنْ يَنَالُهُ التَّقْوٰى مِنْكُمْۜ كَذٰلِكَ سَخَّرَهَا لَكُمْ
لِتُكَبِّرُوا اللّٰهَ عَلٰى مَا هَدٰيكُمْۜ وَبَشِّرِ الْمُحْسِن۪ينَ ٣٧ اِنَّ اللّٰهَ
يُدَافِعُ عَنِ الَّذ۪ينَ اٰمَنُواۜ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ كُلَّ خَوَّانٍ كَفُورٍ ٣٨

**31.** Ji wî re qet tu şirîk çênekin û (bi terikandina her cureyên wê) bi henîftî (evana bikin). Kî jî ji Allah re şirîk çêke her wekî wî kesê ye ku ew ji asîman ketîye xwarê û ew hêj li hewayê teyr xwe lê bidin (û parçe parçe bikin) an jî ba wî bi cihekî xewle û dûr ve berhewa bike.
(Ji bo tarîf û cureyên şirkê û ji bo encama muşrîkan bnr. 4/Nîsa, 48.)

**32.** Ha wisan... Kî jî şîarên Allah (tiştên ku wî bi bîr tînin û daxwaza rûmetgirîya wî dike) berz/bilind bike bêşik ev, ji teqwadarîya qelban e.

**33.** Wî (di heywanan de hetanî bên qurbankirin) heta demeke diyarkirî ji bo we feyde hene. Paşê cihê wan (ya ku bên qurbankirin) Beyti'l Atîk e.



**34.** Me ji her ummetê re mensekek/rêya îbadetê (serjêkirina qurbanê) meşrû kiriye; ji bo ku li ser heywanên ku Allah wan riziqandîye navê wî hildin/zikir bikin. Îlâhê we yek îlâhek tenê ye. Her wiha teslîmê wî bibin. Mizgînê bide wan (ên wek nefsbiçûk û dilhedinî teslîmê Allah bûne) muhbîtan.

**35.** Ew in ku; dema navê Allah tê zikirkirin, qelbê wan dilerize û ji ber tiştên tê serê wan sebir dikin û nimêja xwe rasterast dikin û ji rizqên ku me daye wan înfaq dikin.

**36.** Me heywanên qurbanê jî ji we re kiriye nîşanên/şîarên Allah. Ji bo we di wan de xêr heye. Nexwe (ji bo qurbankirinê re) dema li ser pîyan in navê Allah zikir bikin. Dema ku bi ser kêleka xwe ve ketin (serjê bûn) ji wan bixwin û bi yên ku dixwazin û yên qenaetkar in (naxwazin) jî bidin xwarin. Me ew (heywan) ji we re bikêr/berdest kirine da ku hûn şikur bikin

**37.** Ne goşt û ne jî xwîna wan (qurbanan) digihîje Allah. Lê teqwa we digihîje Allah. Herwiha ji ber ku wan (heywanan ji bo hûn bi rihetî serjê bikin) ji we re sernerm kiriye û we hîdayet kiriye da ku hûn jî di muqabilê vê de Allah tekbîr/berz bikin. Mizgînê bide muhsînan/qencîkaran (ew ên ku evdîtîya xwe herî xweşik teqdîm dikin)!

**38.** Bizanibin ku Allah mumînan diparêze/mudafea dike. Bêşik Allah ji tu kesên xayîn û nankor hez nake.

اُذِنَ لِلَّذٖينَ يُقَاتَلُونَ بِاَنَّهُمْ ظُلِمُواۜ وَاِنَّ اللّٰهَ عَلٰى نَصْرِهِمْ
لَقَدٖيرٌۙ ﴿٣٩﴾ اَلَّذٖينَ اُخْرِجُوا مِنْ دِيَارِهِمْ بِغَيْرِ حَقٍّ اِلَّٓا اَنْ يَقُولُوا
رَبُّنَا اللّٰهُۜ وَلَوْلَا دَفْعُ اللّٰهِ النَّاسَ بَعْضَهُمْ بِبَعْضٍ لَهُدِّمَتْ
صَوَامِعُ وَبِيَعٌ وَصَلَوَاتٌ وَمَسَاجِدُ يُذْكَرُ فٖيهَا اسْمُ اللّٰهِ
كَثٖيرًاۜ وَلَيَنْصُرَنَّ اللّٰهُ مَنْ يَنْصُرُهُۜ اِنَّ اللّٰهَ لَقَوِيٌّ عَزٖيزٌ ﴿٤٠﴾
اَلَّذٖينَ اِنْ مَكَّنَّاهُمْ فِي الْاَرْضِ اَقَامُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتَوُا
الزَّكٰوةَ وَاَمَرُوا بِالْمَعْرُوفِ وَنَهَوْا عَنِ الْمُنْكَرِۜ وَلِلّٰهِ
عَاقِبَةُ الْاُمُورِ ﴿٤١﴾ وَاِنْ يُكَذِّبُوكَ فَقَدْ كَذَّبَتْ قَبْلَهُمْ
قَوْمُ نُوحٍ وَعَادٌ وَثَمُودُۙ ﴿٤٢﴾ وَقَوْمُ اِبْرٰهٖيمَ وَقَوْمُ لُوطٍۙ ﴿٤٣﴾
وَاَصْحَابُ مَدْيَنَۚ وَكُذِّبَ مُوسٰى فَاَمْلَيْتُ لِلْكَافِرٖينَ ثُمَّ
اَخَذْتُهُمْۚ فَكَيْفَ كَانَ نَكٖيرِ ﴿٤٤﴾ فَكَاَيِّنْ مِنْ قَرْيَةٍ
اَهْلَكْنَاهَا وَهِيَ ظَالِمَةٌ فَهِيَ خَاوِيَةٌ عَلٰى عُرُوشِهَا وَبِئْرٍ
مُعَطَّلَةٍ وَقَصْرٍ مَشٖيدٍ ﴿٤٥﴾ اَفَلَمْ يَسٖيرُوا فِي الْاَرْضِ فَتَكُونَ
لَهُمْ قُلُوبٌ يَعْقِلُونَ بِهَٓا اَوْ اٰذَانٌ يَسْمَعُونَ بِهَاۚ فَاِنَّهَا لَا تَعْمَى
الْاَبْصَارُ وَلٰكِنْ تَعْمَى الْقُلُوبُ الَّتٖي فِي الصُّدُورِ ﴿٤٦﴾

**39.** Ji bo wan ên ku bi wan re şer tê kirin, ji ber zilma li wan hatîye kirin destûr (a şer) ji wan re hatîye dayîn. Bêguman Allah li ser alîkarîya wan qadir e.

**40.** Ew ên ji bo ku digotin: "Rabbê me Allah e." bi neheqî ji warên xwe hatine derxistin. Eger Allah hinek însanan bi hinekên din neda qewirandin/neda alî (li ser rûyê erdê nebûna maniê fesada wan) bêşik wê manastir û dêr û hewra û mizgeftên ku navê Allah di wan de pirzêde tên zikirkirin, dê xerabibûna. Helbet Allah wê alîkarîya wî kesî bike ku ew jî alîkarê wî ye. Bêguman Allah (yê xwedî hêz û quwwet) Qawîy û (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz e.

**41.** Ew ên (Allah alîkarîya wan kiriye) dema ku li ser rûyê erdê îqtîdar bikeve destê wan; nimêja xwe îqame (rasterast) dikin û zekâta xwe didin û marûfê (qencîyê) emir dikin û ji munkeratê jî men dikin. Aqûbeta her tiştî (qerara dawî ya der heqê wan de) aîdê Allah e.

**42.** Eger te biderewînin bêşik berîya wan qewmê Nûh û Âdem û Semûd jî derewandibûn.

**43.** Qewmê Îbrahîm û qewmê Lût jî...

**44.** Xelkê Medyenê jî... Mûsa jî hatibû derewandin. Min jî muhletekî dabû ber kafiran û paşê wan (bi ezab) girtibû. Gelo çawa bû (li dij derewandina wan) înkara/neqayîlîya min?

**45.** Gelek bajarên ku xelkê wî zalim bûn me ew helak kirin; êdî ew serûbinê hev bûne û gelek bîr (ên avê) çikîyayî/bêxwedî mane û qesrên dîwarbilind jî terikandî û xerabe mane.

**46.** Erê ma qey ew li ser rûyê erdê nagerin da ku bila ji wan re qelbekî ku pê bifikirin û guhekî ku pê bibihîzin çêbibin? Lewre çav kor nabin. Qelbên di singan de kor dibin.

وَيَسْتَعْجِلُونَكَ بِالْعَذَابِ وَلَنْ يُخْلِفَ اللّٰهُ وَعْدَهُ وَاِنَّ
يَوْمًا عِنْدَ رَبِّكَ كَاَلْفِ سَنَةٍ مِمَّا تَعُدُّونَ ﴿٤٧﴾ وَكَاَيِّنْ
مِنْ قَرْيَةٍ اَمْلَيْتُ لَهَا وَهِيَ ظَالِمَةٌ ثُمَّ اَخَذْتُهَا وَاِلَيَّ الْمَصِيرُ ﴿٤٨﴾
قُلْ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنَّمَٓا اَنَا۬ لَكُمْ نَذِيرٌ مُبِينٌ ﴿٤٩﴾ فَالَّذِينَ
اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَرِزْقٌ كَرِيمٌ ﴿٥٠﴾
وَالَّذِينَ سَعَوْا فِٓي اٰيَاتِنَا مُعَاجِزِينَ اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ
الْجَحِيمِ ﴿٥١﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ مِنْ رَسُولٍ وَلَا نَبِيٍّ
اِلَّٓا اِذَا تَمَنّٰٓى اَلْقَى الشَّيْطَانُ فِٓي اُمْنِيَّتِه۪ فَيَنْسَخُ اللّٰهُ مَا يُلْقِي
الشَّيْطَانُ ثُمَّ يُحْكِمُ اللّٰهُ اٰيَاتِه۪ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌ ﴿٥٢﴾
لِيَجْعَلَ مَا يُلْقِي الشَّيْطَانُ فِتْنَةً لِلَّذِينَ فِي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ
وَالْقَاسِيَةِ قُلُوبُهُمْ وَاِنَّ الظَّالِمِينَ لَفِي شِقَاقٍ بَعِيدٍ ﴿٥٣﴾
وَلِيَعْلَمَ الَّذِينَ اُو۫تُوا الْعِلْمَ اَنَّهُ الْحَقُّ مِنْ رَبِّكَ فَيُؤْمِنُوا
بِه۪ فَتُخْبِتَ لَهُ قُلُوبُهُمْ وَاِنَّ اللّٰهَ لَهَادِ الَّذِينَ اٰمَنُوا اِلٰى صِرَاطٍ
مُسْتَقِيمٍ ﴿٥٤﴾ وَلَا يَزَالُ الَّذِينَ كَفَرُوا فِي مِرْيَةٍ مِنْهُ حَتّٰى
تَأْتِيَهُمُ السَّاعَةُ بَغْتَةً اَوْ يَأْتِيَهُمْ عَذَابُ يَوْمٍ عَقِيمٍ ﴿٥٥﴾

**47.** Ew ji te bi lez ezab dixwazin. (Lê belê) Allah ji weada xwe qethîyen nazivire/venagere. Bi rastî rojeke li cem Rabbê te bi qasî hezar salên hûn dijmêrin e.

**48.** Gelek bajarên digel ku xelkê wan zilim dikirin min muhlet da wan û paşê min ew (bi ezab) helak kirin. Veger her bi bal min ve ye.

**49.** Bibêje: "Gelî însanan! Bi rastî ez ji we re tenê hişyarkarek im."

**50.** Heçî ew ên îmân anîne û amelên salih kirine, ji wan re mexfîret û rizqekî hêja heye.

**51.** Ew ên ji bo aciztîya/nemutebertîya ayetên me di nav xebatê de ne (belê), evana ehlê cehenemê ne.

**52.** Me berîya te her çiqas rasûl û nebîyên şandine dema dest bi xwendina (Kitabullah) kiriye muheqeq şeytan her hewl daye/daxwaz kiriye ku hin tiştan tevlî xwendina wî bike. Lê Allah, tişt (weswese û guman) ên wî (şeytan) daxwaz kiriye ku tevlî wê bike, pûç dike/diborîne û piştre ayetên xwe muhkem/zexm dike. Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**53.** Allah (wiha dike da ku) bi wan tiştên şeytan dixwaze tevlî wê bike, ew ên di qelbê wan de nexweşî hene û ew ên qelbê wan hişk bûne re bike fitne/îmtîhan. Bêguman ew ên zilimkar di cudahîyeke kûr de ne (ku civandina wan a li cem hev û vegera wan a bal bi heqîyê ve pir zor e).

**54.** (Wekî din) ji bo ku ew ên ilim ji wan re hatîye dayîn bizanibin ku ev (Qur'an) ji Allah e û bi wê îmân bînin û qelbê wan bi dilnizmî teslîmî (hukmên wê) bibe (wiha dike). Bêşik Allah, mumînan li ser hîdayetê rasterê dike.

**55.** Ew ên kafir jî hetanî ku ji nîşka ve qiyamet bi ser wan ve neyê an jî ezaba rojeke eqîm (rojeke bêkêr/kêmber ku qet tu feyda wê ji wan re tune) neyê ew ê der heqê wê (Qur'anê de) di gumanê de bimînin.

اَلْمُلْكُ يَوْمَئِذٍ لِلّٰهِ يَحْكُمُ بَيْنَهُمْ فَالَّذِينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ فِي جَنَّاتِ النَّعِيمِ ﴿٥٦﴾ وَالَّذِينَ
كَفَرُوا وَكَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا فَاُولٰٓئِكَ لَهُمْ عَذَابٌ
مُهِينٌ ﴿٥٧﴾ وَالَّذِينَ هَاجَرُوا فِي سَبِيلِ اللّٰهِ ثُمَّ
قُتِلُٓوا اَوْ مَاتُوا لَيَرْزُقَنَّهُمُ اللّٰهُ رِزْقًا حَسَنًا وَاِنَّ اللّٰهَ
لَهُوَ خَيْرُ الرَّازِقِينَ ﴿٥٨﴾ لَيُدْخِلَنَّهُمْ مُدْخَلًا يَرْضَوْنَهُ
وَاِنَّ اللّٰهَ لَعَلِيمٌ حَلِيمٌ ﴿٥٩﴾ ذٰلِكَ وَمَنْ عَاقَبَ
بِمِثْلِ مَا عُوقِبَ بِهِ ثُمَّ بُغِيَ عَلَيْهِ لَيَنْصُرَنَّهُ اللّٰهُ
اِنَّ اللّٰهَ لَعَفُوٌّ غَفُورٌ ﴿٦٠﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ يُولِجُ الَّيْلَ
فِي النَّهَارِ وَيُولِجُ النَّهَارَ فِي الَّيْلِ وَاَنَّ اللّٰهَ سَمِيعٌ بَصِيرٌ ﴿٦١﴾
ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ هُوَ الْحَقُّ وَاَنَّ مَا يَدْعُونَ مِنْ دُونِهِ
هُوَ الْبَاطِلُ وَاَنَّ اللّٰهَ هُوَ الْعَلِيُّ الْكَبِيرُ ﴿٦٢﴾ اَلَمْ تَرَ
اَنَّ اللّٰهَ اَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَتُصْبِحُ الْاَرْضُ
مُخْضَرَّةً اِنَّ اللّٰهَ لَطِيفٌ خَبِيرٌ ﴿٦٣﴾ لَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ
وَمَا فِي الْاَرْضِ وَاِنَّ اللّٰهَ لَهُوَ الْغَنِيُّ الْحَمِيدُ ﴿٦٤﴾

**56.** Wê rojê serwerî/hakimîyet aîdê Allah e. Ew di navbera wan de hukim dide. Ew ên îmân anîne û amelên salih kirine di nava cennetên Naîm de ne.

**57.** Heçî ew ên înkar kirine û ayetên me derewandine, ha ji wan re ezabekî riswaker heye.

**58.** Ew ên di rêya Allah de hîcret kirine û piştre hatibe kuştin an jî miribe, wê Allah helbet rizqekî xweşik bide wî. Allah, muheqeq herî bixêrtirê raziqan e.

**59.** Wê wan têxe cihekî wisan ku pê qayîl bibin. Bêguman Allah (zanayê her tiştî) Alîm û (ew cezayên ku heq dikin jî ji ser evdên xwe bi paş ve davêje/texîr dike) Halîm e.

**60.** Ha wisan... Kî bi qasî zilima ku lê hatîye kirin û bi misla neheqîya ku lê hatîye kirin muqabele bike û paşê dîsa piroletî/êrîş lê bê kirin muheqeq wê Allah alîkarîya wî bike. Bêguman Allah (yê ku gunehan efû dike) Afûw û (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr e.

**61.** Ha wisan... Bi rastî Allah şevê tevlî rojê dike û rojê jî tevlî şevê dike. Bêguman Allah (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e.

**62.** Ev wiha ye... Lewre Allah (çavkanîya/menbaa heq û heqîqetê) Heq bixwe ye. Tiştê ku ji xeynî wî lavayî/dûayê li wan dikin jî batil in. Bêguman Allah (bi zat û sifetên xwe herî bilind) Alîy û (yê herî mezin) Kebîr e.

**63.** Ma te nedît? Allah ji asîman av daxist. Erd pê hêşîn bû. Bêguman Allah (yê ku bi ilmê xwe nifûzê her tiştî dike û xwedî lutuf û îhsan) Latîf û (agahdarê her tiştî) Xabîr e.

**64.** Hemû tiştên li erd û esmanan aîdê wî ne. Bêguman Allah (ew ê her tişt muhtacê wî ye lê ew ne hewcedarê tu kesî) Xenîy û (yê ku herî zêde hemd û pesinandinê heq dike û ji alîyê heyînan ve tê pesinandin) Hamîd e.

اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ سَخَّرَ لَكُمْ مَا فِي الْاَرْضِ وَالْفُلْكَ
تَجْر۪ي فِي الْبَحْرِ بِاَمْرِه۪ۜ وَيُمْسِكُ السَّمَٓاءَ اَنْ تَقَعَ
عَلَى الْاَرْضِ اِلَّا بِاِذْنِه۪ۜ اِنَّ اللّٰهَ بِالنَّاسِ لَرَؤُ۫فٌ رَح۪يمٌ ﴿٦٥﴾
وَهُوَ الَّذ۪ٓي اَحْيَاكُمْۘ ثُمَّ يُم۪يتُكُمْ ثُمَّ يُحْي۪يكُمْۜ
اِنَّ الْاِنْسَانَ لَكَفُورٌ ﴿٦٦﴾ لِكُلِّ اُمَّةٍ جَعَلْنَا مَنْسَكًا
هُمْ نَاسِكُوهُ فَلَا يُنَازِعُنَّكَ فِي الْاَمْرِ وَادْعُ اِلٰى رَبِّكَۜ
اِنَّكَ لَعَلٰى هُدًى مُسْتَق۪يمٍ ﴿٦٧﴾ وَاِنْ جَادَلُوكَ فَقُلِ اللّٰهُ اَعْلَمُ
بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿٦٨﴾ اَللّٰهُ يَحْكُمُ بَيْنَكُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ
ف۪يمَا كُنْتُمْ ف۪يهِ تَخْتَلِفُونَ ﴿٦٩﴾ اَلَمْ تَعْلَمْ اَنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ مَا فِي السَّمَٓاءِ
وَالْاَرْضِۜ اِنَّ ذٰلِكَ ف۪ي كِتَابٍۜ اِنَّ ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَس۪يرٌ ﴿٧٠﴾
وَيَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مَا لَمْ يُنَزِّلْ بِه۪ سُلْطَانًا وَمَا لَيْسَ لَهُمْ
بِه۪ عِلْمٌۜ وَمَا لِلظَّالِم۪ينَ مِنْ نَص۪يرٍ ﴿٧١﴾ وَاِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا
بَيِّنَاتٍ تَعْرِفُ ف۪ي وُجُوهِ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا الْمُنْكَرَۜ يَكَادُونَ
يَسْطُونَ بِالَّذ۪ينَ يَتْلُونَ عَلَيْهِمْ اٰيَاتِنَاۜ قُلْ اَفَاُنَبِّئُكُمْ بِشَرٍّ
مِنْ ذٰلِكُمْۜ اَلنَّارُۜ وَعَدَهَا اللّٰهُ الَّذ۪ينَ كَفَرُواۜ وَبِئْسَ الْمَص۪يرُ ﴿٧٢﴾

**65.** Ma te nedît? Allah hemû tiştên li ser rûyê erdê xist bin emrê we. Keştî jî li ser behrê bi emrê wî diherikin/dikişin û esman digire da ku heta bê îzna wî nekeve ser erdê. Bêguman Allah, li ser evdên xwe (pir bi şefqet) Raûf û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**66.** Ew ê ku we (bi heyîkirina ji tunebûnê) vejandîye û paşê bimirîne û (roja qiyametê) ji nû de bivejîne ew e. Bêşik însan pir nankor e.

**67.** Me ji her ummetê re mensekek/rêyeke îbadetê diyar kiriye û ew li ser wê amel dikin. Nexwe bila tu kes li ser vê mijarê bi te re nîqaş neke/destûra nîqaşê nede. Tu dawetî Rabbê xwe bike! Bêguman tu, li ser hîdayetekî rasterast î.

**68.** Eger ew bi te re nîqaş bikin/têbikoşin, bibêje: "Allah, bi ya ku hûn dikin herî çêtir dizane."

**69.** Allah, li ser mijarên ku we tê de îxtîlaf dikir de wê roja qiyametê hukim bide.

**70.** Ma qey tu nizanî ku Allah, bi hemû tiştên li erd esmanan hene dizane. Bêşik evana di Kitêbekî de ne. Bêguman ev, ji bo Allah pir hêsan e.

**71.** Ew ji xeynî Allah îbadetê tiştên din dikin ku der heqê wan de qet tu delîl danexistîye û qet tu zanîna wan jî tune. Ji zaliman re qet tu alîkar tune.

**72.** Dema ku ayetên me yên eşkere ji wan re tên xwendin tu di rûyê kafiran de nerazîtî/nexoşnûdîtî dibînî. Hema hema dikin ku êrîşî wan ên ayetên me ji wan re dixwînin bikin. Bibêje: "Ez saloxa tiştekî ji vê bi şertir/xerabtir bidim we? Agir! Allah ew ji kafiran re wead kiriye. Ew çi cihlêvegerekî xerab e."

يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ ضُرِبَ مَثَلٌ فَاسْتَمِعُوا لَهُۜ اِنَّ الَّذ۪ينَ تَدْعُونَ
مِنْ دُونِ اللّٰهِ لَنْ يَخْلُقُوا ذُبَابًا وَلَوِ اجْتَمَعُوا لَهُۜ وَاِنْ يَسْلُبْهُمُ
الذُّبَابُ شَيْـًٔا لَا يَسْتَنْقِذُوهُ مِنْهُۜ ضَعُفَ الطَّالِبُ وَالْمَطْلُوبُ ﴿٧٣﴾
مَا قَدَرُوا اللّٰهَ حَقَّ قَدْرِه۪ۜ اِنَّ اللّٰهَ لَقَوِيٌّ عَز۪يزٌ ﴿٧٤﴾ اَللّٰهُ يَصْطَف۪ي
مِنَ الْمَلٰٓئِكَةِ رُسُلًا وَمِنَ النَّاسِۜ اِنَّ اللّٰهَ سَم۪يعٌ بَص۪يرٌۚ ﴿٧٥﴾ يَعْلَمُ
مَا بَيْنَ اَيْد۪يهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْۜ وَاِلَى اللّٰهِ تُرْجَعُ الْاُمُورُ ﴿٧٦﴾ يَٓا اَيُّهَا
الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا ارْكَعُوا وَاسْجُدُوا وَاعْبُدُوا رَبَّكُمْ وَافْعَلُوا
الْخَيْرَ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَۚ ﴿٧٧﴾ وَجَاهِدُوا فِي اللّٰهِ حَقَّ جِهَادِه۪ۜ
هُوَ اجْتَبٰيكُمْ وَمَا جَعَلَ عَلَيْكُمْ فِي الدّ۪ينِ مِنْ حَرَجٍۜ
مِلَّةَ اَب۪يكُمْ اِبْرٰه۪يمَۜ هُوَ سَمّٰيكُمُ الْمُسْلِم۪ينَ مِنْ قَبْلُ
وَف۪ي هٰذَا لِيَكُونَ الرَّسُولُ شَه۪يدًا عَلَيْكُمْ وَتَكُونُوا
شُهَدَٓاءَ عَلَى النَّاسِۚ فَاَق۪يمُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا الزَّكٰوةَ
وَاعْتَصِمُوا بِاللّٰهِۜ هُوَ مَوْلٰيكُمْۚ فَنِعْمَ الْمَوْلٰى وَنِعْمَ النَّص۪يرُ ﴿٧٨﴾

سُورَةُ الْمُؤْمِنُونَ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ مِائَةٌ وَثَمَانِي عَشْرَةَ اٰيَةً

**73.** Gelî însanan! Ji we re mîsalek hatîye dayîn (bi dîqat) guhdar bin. Ew ên hûn ji xeynî Allah ji wan re îbadet dikin hemû werin cem hev nikarin mêşekî jî bixuliqînin. Eger mêş tiştekî ji wan bikişîne û bigire, nikarin wê (ji destê mêşê) xelas bikin. Yê ku dixwaze jî aciz e û yê jê tê xwestin jî...

**74.** Wan bi awayê lêhatî/layiqê wî, qedrê Allah negirtine. (Tênegihîştine qudret û ezameta Allah û fêm nekirin.) Bêguman Allah (yê xwedî hêz û quwwet) Qawîy û (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz e.

**75.** Allah, ji melâîketan û ji însanan kî bivê wek qasid hildibijêre. Bêguman Allah, (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e.

**76.** (Ew) ya bi pêşîya wan de jî û ya bi dawîya wan de jî dizane. Hemû kar bi bal Allah ve tên vegerandin.

**77.** Gelî ew ên îmân anîne! Herin rûkuê û secde bikin û ji Rabbê xwe re îbadetê/evdîtîyê bikin û amelên qenc bikin; hêvî heye ku hûn bigihîjin xelasîyê.

**78.** Di rêya Allah de bi heqî/bi awayê lêhatî cîhad bikin. Wî hûn hilbijartîye. Di dîn de tengasîyek/zorahîyek li we bar nekirîye. (Bidin pey) milletê ceddê/bavûkalê xwe Îbrahîm! Wî (Allah) hem di berê de û hem di vê de we bi navê muslîm (ew evdên ku şirkê terk kirine û bi tewhîdê berê xwe dane Allah) navandîye ku, pêxember li ser we û hûn jî li ser însanan şahidî bikin. Nimêja xwe îqame/rasterast bikin û zekâtê bidin û xwe bi Allah ve bigirin. Ew, mewlayê we ye. Çi mewlayekî rind û çi dostekî xweşik!

(Ji bo Milletê Îbrahîm bnr. 60/Mumtehîne, 4.)




## 23. SÛREYA MU'MÎNÛN

*(Sûreya Mu'mînûn, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sed û hijdeh (118) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya bîst û sêyemîn e. Sûre, navê xwe ji peyva "Mu'mînûn" ku di ayeta yekemîn de dibore sitendîye. Di sûreyê de behsa mumînan û wesf û helwestên wan tê kirin. Nûh (as) û çêkirina keştîyê û tofan jî di navê de, qiseyên hin pêxemberan tê vegotin. Ev sûre, di heman demê de ji bo paganîstan hişyarîyeke xurt e. Ligel vê di sûreyê de dibe mijar ku wê mumîn bigihîjin serkeftinê û kesên xerab wê bên cezakirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
قَدْ اَفْلَحَ الْمُؤْمِنُونَۙ ﴿١﴾ اَلَّذ۪ينَ هُمْ ف۪ي صَلَاتِهِمْ خَاشِعُونَۙ ﴿٢﴾
وَالَّذ۪ينَ هُمْ عَنِ اللَّغْوِ مُعْرِضُونَۙ ﴿٣﴾ وَالَّذ۪ينَ هُمْ
لِلزَّكٰوةِ فَاعِلُونَۙ ﴿٤﴾ وَالَّذ۪ينَ هُمْ لِفُرُوجِهِمْ حَافِظُونَۙ ﴿٥﴾
اِلَّا عَلٰٓى اَزْوَاجِهِمْ اَوْ مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُهُمْ فَاِنَّهُمْ غَيْرُ
مَلُوم۪ينَۚ ﴿٦﴾ فَمَنِ ابْتَغٰى وَرَٓاءَ ذٰلِكَ فَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْعَادُونَۚ ﴿٧﴾
وَالَّذ۪ينَ هُمْ لِاَمَانَاتِهِمْ وَعَهْدِهِمْ رَاعُونَۙ ﴿٨﴾ وَالَّذ۪ينَ هُمْ
عَلٰى صَلَوَاتِهِمْ يُحَافِظُونَۢ ﴿٩﴾ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْوَارِثُونَۙ ﴿١٠﴾ اَلَّذ۪ينَ
يَرِثُونَ الْفِرْدَوْسَۜ هُمْ ف۪يهَا خَالِدُونَ ﴿١١﴾ وَلَقَدْ خَلَقْنَا الْاِنْسَانَ
مِنْ سُلَالَةٍ مِنْ ط۪ينٍۚ ﴿١٢﴾ ثُمَّ جَعَلْنَاهُ نُطْفَةً ف۪ي قَرَارٍ مَك۪ينٍۖ ﴿١٣﴾
ثُمَّ خَلَقْنَا النُّطْفَةَ عَلَقَةً فَخَلَقْنَا الْعَلَقَةَ مُضْغَةً فَخَلَقْنَا
الْمُضْغَةَ عِظَامًا فَكَسَوْنَا الْعِظَامَ لَحْمًاۗ ثُمَّ اَنْشَاْنَاهُ خَلْقًا
اٰخَرَۜ فَتَبَارَكَ اللّٰهُ اَحْسَنُ الْخَالِق۪ينَۜ ﴿١٤﴾ ثُمَّ اِنَّكُمْ بَعْدَ ذٰلِكَ
لَمَيِّتُونَۜ ﴿١٥﴾ ثُمَّ اِنَّكُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ تُبْعَثُونَ ﴿١٦﴾ وَلَقَدْ خَلَقْنَا
فَوْقَكُمْ سَبْعَ طَرَٓائِقَۗ وَمَا كُنَّا عَنِ الْخَلْقِ غَافِل۪ينَ ﴿١٧﴾

**1.** Bêguman mumîn gihîştine felahê/xelasîyê.

**2.** Ew in ku; di nimêjên xwe de di xuşûyê de ne.

(Xuşû, tê ser maneya sikûnetê û aramîyê û zenûnbûnê. Xuşûya di nimêjê de; şewqvedêra wek îtmînana qelbê û sikûnet û aramî û şuûra bûyîna di hizûra Allah (ac) de û hûrmeta bedenî û bêlebatî/bêhereketî û edeb e. Xuşû; di nimêjê de li hemberî Allah (ac) qelb û bedena însan ku bi edebê bê xemilandin e. Nimêja ku însan ji xerabîyan men dike (29/Ankebût, 45) û zêdekirina sebrê (2/Baqara, 45) û parastina ji xwedbînî/bexîlî û qesîsîyê (70/Mearîc, 19-22) û dabînkirina gunehan (11/Hûd, 114) enceq bi nimêja ku bi xuşû tê kirin carî ye.)

**3.** Û ew, ji tiştên kelevajî rû vedigerînin.

**4.** Û ew, mesulîyeta/berpirsîyarîya zekâtê bi cih tînin.

**5.** Û ew, îffeta xwe diparêzin.

**6.** Ji xeynî hevjîn û carîyeyên wan. Ji ber (ligelhevbûna) van re nayên lomandin.

**7.** Kesê ku ji vêya wirdetir ve li tiştekî din bigere (ji xeynî hevjîn û carîyeyên xwe bi hinên din re bihemikîne), ha ew ên ha ji hedê xwe borîne.

**8.** Û ew, (çi ew ên di navbera xwe û Rabbê xwe de û çi di navbera xwe û însanan de) emanetên xwe diparêzin û li ser ehdên xwe disekinin.

**9.** Û ew, (wext û şert û rûkn û xuşû û sinnetên) nimêjên xwe diparêzin.

**10.** Ew ên ku wê bibin waris ha ev in.

**11.** Ew ji cennetên Firdews re dibin waris û di wir de ebedî dimînin.

**12.** Sond be, me însan ji herîyeke sefandî/darivandî xuliqand.

**13.** Paşê me wek dilopek av/nutfe di qerargehekî zexim/malzarokê de bi cih kir.

**14.** Paşê me ew nutfe wek xwînpareyekê (alaqê) xuliqand. Paşê me ew alaq wek parçeyek goştê cûtî (mudxe) xuliqand. Paşê me ew parçeya goşt vegerande bi hestî ve û piştre jî me goşt li hestî kir. Paşê me ew wek heyîneke herî cûda/cihêreng ava kir. Allahê ku xweşiktirînê xaliqan e, çi qas berz/bilind e.

**15.** Paşê bêguman piştî vêya hûn ê muheqeq bimirin.

**16.** Paşê hûn ê roja qiyametê de bêne vejandin.

**17.** Sond be, me di ser we re heft rê xuliqand in. Em ji xuliqandinê (an jî ji mexluqên xwe) ne xafil in.

وَاَنْزَلْنَا مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً بِقَدَرٍ فَاَسْكَنَّاهُ فِي الْاَرْضِ وَاِنَّا
عَلٰى ذَهَابٍ بِهٖ لَقَادِرُونَ ﴿١٨﴾ فَاَنْشَاْنَا لَكُمْ بِهٖ جَنَّاتٍ مِنْ نَخِيلٍ
وَاَعْنَابٍ لَكُمْ فِيهَا فَوَاكِهُ كَثِيرَةٌ وَمِنْهَا تَاْكُلُونَ ﴿١٩﴾
وَشَجَرَةً تَخْرُجُ مِنْ طُورِ سَيْنَٓاءَ تَنْبُتُ بِالدُّهْنِ وَصِبْغٍ لِلْاٰكِلِينَ ﴿٢٠﴾
وَاِنَّ لَكُمْ فِي الْاَنْعَامِ لَعِبْرَةً نُسْقِيكُمْ مِمَّا فِي بُطُونِهَا
وَلَكُمْ فِيهَا مَنَافِعُ كَثِيرَةٌ وَمِنْهَا تَاْكُلُونَ ﴿٢١﴾ وَعَلَيْهَا
وَعَلَى الْفُلْكِ تُحْمَلُونَ ﴿٢٢﴾ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا نُوحًا اِلٰى قَوْمِهٖ فَقَالَ
يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ اَفَلَا تَتَّقُونَ ﴿٢٣﴾ فَقَالَ
الْمَلَؤُا الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ قَوْمِهٖ مَا هٰذَٓا اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُكُمْ يُرِيدُ
اَنْ يَتَفَضَّلَ عَلَيْكُمْ وَلَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ لَاَنْزَلَ مَلٰٓئِكَةً مَا سَمِعْنَا
بِهٰذَا فِٓي اٰبَٓائِنَا الْاَوَّلِينَ ﴿٢٤﴾ اِنْ هُوَ اِلَّا رَجُلٌ بِهٖ جِنَّةٌ فَتَرَبَّصُوا بِهٖ
حَتّٰى حِينٍ ﴿٢٥﴾ قَالَ رَبِّ انْصُرْنِي بِمَا كَذَّبُونِ ﴿٢٦﴾ فَاَوْحَيْنَٓا اِلَيْهِ
اَنِ اصْنَعِ الْفُلْكَ بِاَعْيُنِنَا وَوَحْيِنَا فَاِذَا جَٓاءَ اَمْرُنَا وَفَارَ التَّنُّورُ
فَاسْلُكْ فِيهَا مِنْ كُلٍّ زَوْجَيْنِ اثْنَيْنِ وَاَهْلَكَ اِلَّا مَنْ سَبَقَ عَلَيْهِ
الْقَوْلُ مِنْهُمْ وَلَا تُخَاطِبْنِي فِي الَّذِينَ ظَلَمُوا اِنَّهُمْ مُغْرَقُونَ ﴿٢٧﴾

**18.** Me ji esmanan li gorî pîvanekê av daxist û li ser rûyê erdê bi cih kir. Bêguman em li ser birîna/çikandina wê jî qadir in.

**19.** Me bi wê (avê) bexçeyên xurme û rezên tirî ava kir. Li wê derê ji we re pir fêkî hene û hûn ji wan dixwin.

**20.** Û me darekê (zeytûnê) li Tûr-î Sîna derxist (û bi wê avê hêşîn kir) ku ew dar ji bo yên dixwin re hem rûn û hem qatix/pêxwarin e.

**21.** Bêguman di heywanan de jî ji bo we îbretek heye. Em (şîr) ên di zikê wan de bi we didin vexwarin. Ji bo we di wan de pir feyde hene û hûn ji wan dixwin jî.

**22.** Hûn li ser wan (heywanan) û li ser keştîyan têne hilgirtin.

**23.** Sond be, me Nûh ji qewmê wî re şand. "Gelî qewmê min! Ji Allah re îbadetê bikin. Ji we re ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu Îlâh tune. Hûn (ji Allah) natirsin?"

**24.** Giregirên qewmê wî yên kafir gotibûn: "Ev ê ha, enceq mirovekî wekî we ye. (Bi wê îdîaya pêxembertîyê jî) dixwaze ku xwe serdestî we bigire. Eger Allah bixwesta wê melâîketan daxistana. Me ji bavûkalên xwe yên berê jî van (gotinan) nebihîstîye/seh nekiriye."

**25.** "Ew (hebe nebe) zilamek e ku (bi cina ketîye) û pê re dînîtî heye. Hetanî demekî çavnêrîya wî bikin (ka wê dawîya vê karê bigihîje ku derê)."

**26.** Got: "Rabbê min! Li hemberî derewandina wan ve alîkarîya min bike."

**27.** Me jî jê re wiha wehîy kir: "Di bin nezareta me de û li gorî wehîya me keştîyê çêke. Dema fermana me hat û tenûr kelîya (tufan dest pê kir) ji her cot (a cureya heywanan) du heban û ji xeynî ew ên di eleyha wan de hikum (ê ezabê) hatîye danîn, malbata xwe jî siwar bike. Der heqê zaliman de nebe muxetebê min. Lewre wê ew bixeniqin."

فَاِذَا اسْتَوَيْتَ اَنْتَ وَمَنْ مَعَكَ عَلَى الْفُلْكِ فَقُلِ الْحَمْدُ
لِلّٰهِ الَّذٖى نَجّٰينَا مِنَ الْقَوْمِ الظَّالِمٖينَ ﴿٢٨﴾ وَقُلْ رَبِّ اَنْزِلْنٖى
مُنْزَلًا مُبَارَكًا وَاَنْتَ خَيْرُ الْمُنْزِلٖينَ ﴿٢٩﴾ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ وَاِنْ كُنَّا
لَمُبْتَلٖينَ ﴿٣٠﴾ ثُمَّ اَنْشَاْنَا مِنْ بَعْدِهِمْ قَرْنًا اٰخَرٖينَ ﴿٣١﴾ فَاَرْسَلْنَا فٖيهِمْ
رَسُولًا مِنْهُمْ اَنِ اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ اَفَلَا تَتَّقُونَ ﴿٣٢﴾
وَقَالَ الْمَلَاُ مِنْ قَوْمِهِ الَّذٖينَ كَفَرُوا وَكَذَّبُوا بِلِقَٓاءِ الْاٰخِرَةِ
وَاَتْرَفْنَاهُمْ فِى الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا مَا هٰذَٓا اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُكُمْ يَاْكُلُ مِمَّا
تَاْكُلُونَ مِنْهُ وَيَشْرَبُ مِمَّا تَشْرَبُونَ ﴿٣٣﴾ وَلَئِنْ اَطَعْتُمْ بَشَرًا مِثْلَكُمْ
اِنَّكُمْ اِذًا لَخَاسِرُونَ ﴿٣٤﴾ اَيَعِدُكُمْ اَنَّكُمْ اِذَا مِتُّمْ وَكُنْتُمْ تُرَابًا
وَعِظَامًا اَنَّكُمْ مُخْرَجُونَ ﴿٣٥﴾ هَيْهَاتَ هَيْهَاتَ لِمَا تُوعَدُونَ ﴿٣٦﴾
اِنْ هِىَ اِلَّا حَيَاتُنَا الدُّنْيَا نَمُوتُ وَنَحْيَا وَمَا نَحْنُ بِمَبْعُوثٖينَ ﴿٣٧﴾
اِنْ هُوَ اِلَّا رَجُلٌ افْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا وَمَا نَحْنُ لَهُ بِمُؤْمِنٖينَ ﴿٣٨﴾
قَالَ رَبِّ انْصُرْنٖى بِمَا كَذَّبُونِ ﴿٣٩﴾ قَالَ عَمَّا قَلٖيلٍ لَيُصْبِحُنَّ
نَادِمٖينَ ﴿٤٠﴾ فَاَخَذَتْهُمُ الصَّيْحَةُ بِالْحَقِّ فَجَعَلْنَاهُمْ غُثَٓاءً فَبُعْدًا
لِلْقَوْمِ الظَّالِمٖينَ ﴿٤١﴾ ثُمَّ اَنْشَاْنَا مِنْ بَعْدِهِمْ قُرُونًا اٰخَرٖينَ ﴿٤٢﴾

**28.** Dema tu û ew ên bi te re derketin ser keştîyê û bicih bûn, bibêje: "Hamd ji wî Allahê re ku em ji qewmê zalim xelas kir."

**29.** Bibêje: "Rabbê min! Min li warekî pîroz/bibereket bicih bike. Tu yî bixêrtirê bicihkeran."

**30.** Bêguman di van (jîyînan) de ayet (ên ku îbret ji wan bên wergirtin) hene. Û bêşik em, teqez îmtîhan dikin.

**31.** Paşê me li dûv wan de neslekî din ava kir.

**32.** Me ji wan re jî ji nav wan bixwe pêxemberek şand (da ku wiha gazî wan bike:) "Ji Allah re îbadetê bikin. Ji we re ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh tune. Hûn (ji Allah) natirsin?"

**33.** Di nava qewmê wî de ew giregirên ku rasthatina axîretê înkar dikirin û diderewandin û ew ên bi refah û dewlemendîyê me di heyata dinyayê de me ew rûdayî/mutref kiribûn wiha gotin: ""Ev ê ha, enceq mirovekî wekî we ye. Ew ji ya ku hûn jê dixwin dixwe û ya ku hûn jê vedixwin vedixwe."

**34.** "Eger hûn bidin pey mirovekî wekî xwe, muheqeq hûn ê bibin ji wan ên ku bi xusranê ketine."

**35.** "Nexwe ew li we wead dike ku dema hûn bimirin û (paşê) bibin ax û hestî hûn ê (ji nû de bên vejandin û ji qebrên xwe) bên derxistin?"

**36.** "Heylê! Heylê! Ev ê ku hûn pê tên tehdîdkirin/çavtirsandin tiştekî pir dûr e."

**37.** "Jiyana me (yek jiyanek e, ew jî) bitenê jiyana dinyayê ye. Em ê bimirin û (yên di pey me re tên wê) bijîn. Nexwe em (piştî mirinê carekî din) nayên vejandin."

**38.** "Ew, bitenê zilamek e ku li ser Allah derewan li hev tîne û îftîra dike. Em bixwe îman naynin."

**39.** Got: "Rabbê min! Li hemberî derewandina wan de alîkarîya min bike."

**40.** Got: "Di demekî nêz de teqez wê poşman bibin."

**41.** Qîrîn (a guhan ker dike û mejîyan diperçiqîne) bi heqî wan girt û me ew kirin weke qirş û qal. (Me got:) "Qewmê zilimkar bila (ji rahmeta Allah) dûr bimîne."

**42.** Paşê me li dûv wan neslên nû ava kirin.

مَا تَسْبِقُ مِنْ اُمَّةٍ اَجَلَهَا وَمَا يَسْتَأْخِرُونَ ﴿٤٣﴾ ثُمَّ اَرْسَلْنَا رُسُلَنَا
تَتْرَا كُلَّمَا جَٓاءَ اُمَّةً رَسُولُهَا كَذَّبُوهُ فَاَتْبَعْنَا بَعْضَهُمْ بَعْضًا
وَجَعَلْنَاهُمْ اَحَادِيثَ فَبُعْدًا لِقَوْمٍ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٤٤﴾ ثُمَّ اَرْسَلْنَا مُوسٰى
وَاَخَاهُ هٰرُونَ بِاٰيَاتِنَا وَسُلْطَانٍ مُبِينٍ ﴿٤٥﴾ اِلٰى فِرْعَوْنَ وَمَلَائِهِ
فَاسْتَكْبَرُوا وَكَانُوا قَوْمًا عَالِينَ ﴿٤٦﴾ فَقَالُٓوا اَنُؤْمِنُ لِبَشَرَيْنِ مِثْلِنَا
وَقَوْمُهُمَا لَنَا عَابِدُونَ ﴿٤٧﴾ فَكَذَّبُوهُمَا فَكَانُوا مِنَ الْمُهْلَكِينَ ﴿٤٨﴾
وَلَقَدْ اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ لَعَلَّهُمْ يَهْتَدُونَ ﴿٤٩﴾ وَجَعَلْنَا ابْنَ
مَرْيَمَ وَاُمَّهُٓ اٰيَةً وَاٰوَيْنَاهُمَٓا اِلٰى رَبْوَةٍ ذَاتِ قَرَارٍ وَمَعِينٍ ﴿٥٠﴾ يَٓا اَيُّهَا
الرُّسُلُ كُلُوا مِنَ الطَّيِّبَاتِ وَاعْمَلُوا صَالِحًا اِنِّي بِمَا تَعْمَلُونَ
عَلِيمٌ ﴿٥١﴾ وَاِنَّ هٰذِهِٓ اُمَّتُكُمْ اُمَّةً وَاحِدَةً وَاَنَا رَبُّكُمْ فَاتَّقُونِ ﴿٥٢﴾
فَتَقَطَّعُٓوا اَمْرَهُمْ بَيْنَهُمْ زُبُرًا كُلُّ حِزْبٍ بِمَا لَدَيْهِمْ فَرِحُونَ ﴿٥٣﴾
فَذَرْهُمْ فِي غَمْرَتِهِمْ حَتّٰى حِينٍ ﴿٥٤﴾ اَيَحْسَبُونَ اَنَّمَا نُمِدُّهُمْ بِهِ
مِنْ مَالٍ وَبَنِينَ ﴿٥٥﴾ نُسَارِعُ لَهُمْ فِي الْخَيْرَاتِ بَلْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٥٦﴾
اِنَّ الَّذِينَ هُمْ مِنْ خَشْيَةِ رَبِّهِمْ مُشْفِقُونَ ﴿٥٧﴾ وَالَّذِينَ هُمْ
بِاٰيَاتِ رَبِّهِمْ يُؤْمِنُونَ ﴿٥٨﴾ وَالَّذِينَ هُمْ بِرَبِّهِمْ لَا يُشْرِكُونَ ﴿٥٩﴾

**43.** Qet tu ummetek ne dikare bikeve pêşîya ecelê xwe û ne jî dikare li paş de bimîne.

**44.** Paşê me pêxemberên xwe li pey hevdu şandin. Çi dema ku pêxember ji wan re dihatin, her ummetek ew derewandin. Me jî wan (bi helak kirinê) dane pey hev û (ji bo neslên pey wan re wek wesîqeya îbretê) me ew kirin qiset/hîkaye. (Me got:) "Qewmê ku îman nayne bila (ji rahmeta Allah) dûr bimîne."

**45.** Paşê di pey wan re me Mûsa û birayê wî Hârûn bi ayetên xwe û bi delîlên eşkere şandin.

**46.** Ji Firewn û i giregirên wî yên nêz re. Quretî kirin. Ew, qewmekî wisan bûn ku (bi kêmdîtina însanan) xwe serdest didîtin.

**47.** Gotin: "Erê ma bi du mirovên wekî xwe ku qewmê wan bixwe jî evdîtîya me dikin, em ê îman (bi wan) bînin?"

**48.** Wan derewandin û bûn ji wan ên helakbûyî.

**49.** Sond be, ji bo ku hîdayet bibin me Kitêb da Mûsa.

**50.** Û (dîsa) sond be, me (Îsâyê) kurê Meryem û dêya wî jî kir ayet. Me her du li girekî ku ji rûniştinê re munasib bû li wê derê kanîya avê hebû niştecih/bi cih kir.

**51.** Gelî pêxemberan! Ji tiştên paqij bixwin û karên qenc bikin. Bêguman ez, bi amelên we dizanim.
(Ji bo giringîya xwarina paqij û helal bnr. 2/Baqara, 172.)

**52.** Bêguman ev ummeta we, yek ummet (a îslâm) e. Ez jî Rabbê we me. (Herwiha) ji min bitirsin û xwe biparêzin.

**53.** Wan dînê xwe li ser rewşa Kitêbên cuda kirin parçe parçe. Her komek bi ya li cem xwe kêfxweş dibin.
(Çawa ku ji alimên luxetê Zeccac diyar kiriye ew peyva "زُبُرًا" ku di ayetê de dibore, pirjimara peyva "زبـــور" Kitêb û rûpel e. Her komek ji bo ku herî çêtir fêm bikin û rave bikin Kitêban nivîsandine û paşê van Kitêban jî ji xwe re kirine dîn. Ew Kitêbên ji bo îzahkirina wehîyê hatine nivîsandin bi demê re ketine şûna eslê Kitêb ê. Êdî çi dema îxtîlafek çêbe serî li wan tê dayîn û ayetên Kitêbê li gorî wan tên nirxandin (!) û wekî ku wehîy e herûdaîm tên xwendin û beşên wan tên jiber kirin û li ser wan tefekkur û tedebbur tê kirin. (Bnr. 2/Baqara, 79))

**54.** Êdî hetanî demeke diyarkirî (ku ezab bê) tu wan di nava xefleta wan de terk bike.

**55.** Ew zen dikin ku bi mal û zarokên ku me pê piştgirîya wan kiriye,

**56.** Ji bo ku em xêrxwazîyê hanhanka/zûzûka rabigihînin wan. (Nexêr, ne wekî zena wan e!) Ew ne di wê şiûrê de ne (ku em wan gav bi gav nêzî ezabê dikin).
(Bnr. 18/Kehf, 36)

**57.** Bêguman ew (mumîn) in ku, ji ber hûrmeta Rabbê xwe (qelbên) wan dilerize,

**58.** Û ew ên îman bi ayetên Rabbê xwe tînin,

**59.** Û ew ên ji Rabbê xwe re (qet tu tiştî) nakin şirîk,

**60.** Û ew ên digel (hemû mesûlîyetên) li ser wan pêwist e dikin, ji ber ku wê vegerin bi bal Rabbê xwe ve (li ser dibetîya kirina amelekî nelêhatîya ezameta Allah an jî amelên ku kirine ji wan qebûl nebe) qelbê wan dilerize/direcife,

**61.** Ha ev ên hanê, di xêran de pêşberîyê dikin û ji ber vê yekê pêş de diçin.

**62.** Em li tu kesî barekî ku nikare hilbigire bar lê nakin. Li cem me Kitêbeke ku rastîyê dipeyive heye. Neheqî jî li wan nayê kirin.

**63.** Ew (ên mal û ewladên ku me dane wan ji bo xwe xêr dihesibînin jî) qelbê wan (ji îman û amelên salih) di xefletê de ye. (Ji xeynî şirkê) amelên wan (ên xerab) jî hene û ew van amelan dikin.

**64.** Dema ku em ji wan ên mutref/rûdayî yên har (bi ezab) digirin, (tu çi bibînî) di heman demê de qîrîn bi wan dikeve û qajeqajê dikin.

**65.** Îro, qîrîn û qajeqajê nekin. Lewre hûn ji me alîkarîyê nabînin.

**66.** Ayetên min ji we re dihatin xwendin, lê hûn li ser pehnîya xwe ve vegerîyan (we guhdarî nedikir).

**67.** (Bi îdîaya ku hûn ehlê Mescîdu'l Heramê ne) we quretîyê dikir û di şevan de (dema ku hûn dicivîyan xwendina Qur'anê û zikra Allah) terk dikir.

**68.** Qey wan li qewlê (Qur'anê) bi kurahî nedifikirîn? Nexwe tiştek ku berê de ji bav û kalên wan re nehatibû, ji wan re hatîye?

**69.** Nexwe ewana pêxemberên xwe nas nekirine jî (j wê yekê) înkar dikin?

**70.** Nexwe qey ew dibêjin di wî de dînîtîyek heye? (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî ji wan re heqîyê anîye. (Lê belê) pirên wan ji heqîyê hez nakin.

وَالَّذٖينَ يُؤْتُونَ مَٓا اٰتَوْا وَقُلُوبُهُمْ وَجِلَةٌ اَنَّهُمْ اِلٰى رَبِّهِمْ
رَاجِعُونَۙ ﴿٦٠﴾ اُو۬لٰٓئِكَ يُسَارِعُونَ فِي الْخَيْرَاتِ وَهُمْ لَهَا سَابِقُونَ ﴿٦١﴾
وَلَا نُكَلِّفُ نَفْسًا اِلَّا وُسْعَهَا وَلَدَيْنَا كِتَابٌ يَنْطِقُ بِالْحَقِّ
وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿٦٢﴾ بَلْ قُلُوبُهُمْ فٖي غَمْرَةٍ مِنْ هٰذَا وَلَهُمْ اَعْمَالٌ
مِنْ دُونِ ذٰلِكَ هُمْ لَهَا عَامِلُونَ ﴿٦٣﴾ حَتّٰٓى اِذَٓا اَخَذْنَا مُتْرَفٖيهِمْ بِالْعَذَابِ
اِذَا هُمْ يَجْـَٔرُونَۜ ﴿٦٤﴾ لَا تَجْـَٔرُوا الْيَوْمَ اِنَّكُمْ مِنَّا لَا تُنْصَرُونَ ﴿٦٥﴾
قَدْ كَانَتْ اٰيَاتٖي تُتْلٰى عَلَيْكُمْ فَكُنْتُمْ عَلٰٓى اَعْقَابِكُمْ تَنْكِصُونَۙ ﴿٦٦﴾
مُسْتَكْبِرٖينَ بِهٖۗ سَامِرًا تَهْجُرُونَ ﴿٦٧﴾ اَفَلَمْ يَدَّبَّرُوا الْقَوْلَ
اَمْ جَٓاءَهُمْ مَا لَمْ يَاْتِ اٰبَٓاءَهُمُ الْاَوَّلٖينَۘ ﴿٦٨﴾ اَمْ لَمْ يَعْرِفُوا رَسُولَهُمْ
فَهُمْ لَهُ مُنْكِرُونَۘ ﴿٦٩﴾ اَمْ يَقُولُونَ بِهٖ جِنَّةٌۜ بَلْ جَٓاءَهُمْ بِالْحَقِّ
وَاَكْثَرُهُمْ لِلْحَقِّ كَارِهُونَ ﴿٧٠﴾ وَلَوِ اتَّبَعَ الْحَقُّ اَهْوَٓاءَهُمْ لَفَسَدَتِ
السَّمٰوَاتُ وَالْاَرْضُ وَمَنْ فٖيهِنَّۜ بَلْ اَتَيْنَاهُمْ بِذِكْرِهِمْ فَهُمْ
عَنْ ذِكْرِهِمْ مُعْرِضُونَۜ ﴿٧١﴾ اَمْ تَسْـَٔلُهُمْ خَرْجًا فَخَرَاجُ رَبِّكَ خَيْرٌۗ
وَهُوَ خَيْرُ الرَّازِقٖينَ ﴿٧٢﴾ وَاِنَّكَ لَتَدْعُوهُمْ اِلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقٖيمٍ ﴿٧٣﴾
وَاِنَّ الَّذٖينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ عَنِ الصِّرَاطِ لَنَاكِبُونَ ﴿٧٤﴾

(Ji bo gotinên Allah (ac) ya der heqê pirjimarî/ekserîyet û kêmjimarî/eqalîyet de bnr. 11/Hûd, 40.)

**71.** Eger heqî bida pey hewayên/hewesên wan muheqeq wê erd û esman û tiştên di navbera wan de xerab bibûna. (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî me zikra wan (Kitêba ku wan dinasîne û digihîjînê îzzetê) daye wan. (Lê) ew ji zikra xwe rû vedigerînin.

**72.** Qey te ji wan (di muqabilê dawetê de) ji wan xerac xwestîye ku (îman bi te naynin û ji daweta te guman dikin)? Mikafata ku Rabbê te wê (li dinya û li axîretê bide) herî bi xêrtir e. Ew, herî bixêrtirê riziqdaran e.

**73.** Bêguman ku tu, wan gazî rêyeke rasterast dikî.

**74.** Bi rastî ew ên îman bi axîretê naynin, ew in ku ji rê (ya rasterast) averê/rêşaş û dûr bûne.



وَلَوْ رَحِمْنَاهُمْ وَكَشَفْنَا مَا بِهِمْ مِنْ ضُرٍّ لَلَجُّوا فٖى طُغْيَانِهِمْ
يَعْمَهُونَ ﴿٧٥﴾ وَلَقَدْ اَخَذْنَاهُمْ بِالْعَذَابِ فَمَا اسْتَكَانُوا
لِرَبِّهِمْ وَمَا يَتَضَرَّعُونَ ﴿٧٦﴾ حَتّٰٓى اِذَا فَتَحْنَا عَلَيْهِمْ بَابًا
ذَا عَذَابٍ شَدٖيدٍ اِذَا هُمْ فٖيهِ مُبْلِسُونَ ﴿٧٧﴾ وَهُوَ الَّذٖٓى اَنْشَاَ
لَكُمُ السَّمْعَ وَالْاَبْصَارَ وَالْاَفْـِٔدَةَ قَلٖيلًا مَا تَشْكُرُونَ ﴿٧٨﴾
وَهُوَ الَّذٖى ذَرَاَكُمْ فِى الْاَرْضِ وَاِلَيْهِ تُحْشَرُونَ ﴿٧٩﴾
وَهُوَ الَّذٖى يُحْيٖى وَيُمٖيتُ وَلَهُ اخْتِلَافُ الَّيْلِ وَالنَّهَارِ
اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٨٠﴾ بَلْ قَالُوا مِثْلَ مَا قَالَ الْاَوَّلُونَ ﴿٨١﴾ قَالُٓوا
ءَاِذَا مِتْنَا وَكُنَّا تُرَابًا وَعِظَامًا ءَاِنَّا لَمَبْعُوثُونَ ﴿٨٢﴾ لَقَدْ وُعِدْنَا
نَحْنُ وَاٰبَٓاؤُنَا هٰذَا مِنْ قَبْلُ اِنْ هٰذَٓا اِلَّٓا اَسَاطٖيرُ الْاَوَّلٖينَ ﴿٨٣﴾
قُلْ لِمَنِ الْاَرْضُ وَمَنْ فٖيهَٓا اِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٨٤﴾ سَيَقُولُونَ
لِلّٰهِ قُلْ اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ﴿٨٥﴾ قُلْ مَنْ رَبُّ السَّمٰوَاتِ السَّبْعِ
وَرَبُّ الْعَرْشِ الْعَظٖيمِ ﴿٨٦﴾ سَيَقُولُونَ لِلّٰهِ قُلْ اَفَلَا تَتَّقُونَ ﴿٨٧﴾
قُلْ مَنْ بِيَدِهٖ مَلَكُوتُ كُلِّ شَیْءٍ وَهُوَ يُجٖيرُ وَلَا يُجَارُ عَلَيْهِ
اِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٨٨﴾ سَيَقُولُونَ لِلّٰهِ قُلْ فَاَنّٰى تُسْحَرُونَ ﴿٨٩﴾

**75.** Eger em li wan merhamet bikin û tengezarîyên wan biborînin, bêguman (dîsa) wê noqî rêşaşîtîya xwe bibin û ew ê sergêjane bigevizin.

**76.** Sond be me wan bi ezabê girtibû. (Digel vê) dîsa jî ji Rabbê xwe re stûxar nebûn û bi dilsozî zarezar û lavahî nekirin.

**77.** Axir, dema me derîyê ezabekî dijwar di ser wan de vekir, ew li ser rewşa hêvîya xwe winda kirî a wiha dimînin.

**78.** Ew ê ku ji bo we guhan û çavan û qelban xuliqandîye, ew (Allah) e. Hûn çi qas hindik şikur dikin!

**79.** Ew ê ku hûn li ser rûyê erdê belav dike/zêde dike ew e. Û hûn ê ji wî re heşir bibin/bên vejandin û di hizûra wî de bicivin.

**80.** Ew ê vedijîne û dimirîne ew e. Guherîna şev û rojê di pey hev dû jî (karê) wî ye. Hûn aqil nagirin?

**81.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, wan wekî gotina pêşîyên xwe gotin.

**82.** Gotin: "Piştî wê dema ku em bimirin û (paşê) bibin ax û hestî, birastî qey em ê bên vejandin?"

**83.** Sond be, bi rastî em û kalanên xwe bi vê tehdîdê hatibûn tirsandin. Lê ev ji çîrokên/çîvanokên pêşîyan pê ve ne tiştekî din e.

**84.** Bibêje: "Eger hûn dizanin (bibêjin) ka erd û tiştên di navê de aîdê kî ne?"

**85.** Wê bibêjin: "Aîdê Allah in." Bibêje: "Hûn qet şîret nagirin?"

**86.** Bibêje: "Rabbê heft asîman û erşê azîm kî ye?"

**87.** Wê bibêjin: "Allah." Bibêje: "Ma hûn natirsin û xwe naparêzin?"

**88.** Bibêje: "Ma ew ê ku melekûta/hikumranîya her tiştî di destê xwe de digire kî ye? Ew ê ku ew bixwe her tiştî diparêze lê qet tu kes li hemberî wî nayê parastin kî ye? Eger hûn dizanin (ka bibêjin kî ye ew)?"

**89.** Wê bibêjin: "Allah." Bibêje: "Çawa dibe ku hûn wisan bi sêhrê dikevin (bi şirkê tên xapandin û li dij heqîyê derdikevin)?

بَلْ اَتَيْنَاهُمْ بِالْحَقِّ وَاِنَّهُمْ لَكَاذِبُونَ ﴿٩٠﴾ مَا اتَّخَذَ اللّٰهُ
مِنْ وَلَدٍ وَمَا كَانَ مَعَهُ مِنْ اِلٰهٍ اِذًا لَذَهَبَ كُلُّ اِلٰهٍ بِمَا
خَلَقَ وَلَعَلَا بَعْضُهُمْ عَلٰى بَعْضٍ سُبْحَانَ اللّٰهِ عَمَّا يَصِفُونَ ﴿٩١﴾
عَالِمِ الْغَيْبِ وَالشَّهَادَةِ فَتَعَالٰى عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٩٢﴾
قُلْ رَبِّ اِمَّا تُرِيَنِّي مَا يُوعَدُونَ ﴿٩٣﴾ رَبِّ فَلَا تَجْعَلْنِي فِي الْقَوْمِ
الظَّالِمِينَ ﴿٩٤﴾ وَاِنَّا عَلٰى اَنْ نُرِيَكَ مَا نَعِدُهُمْ لَقَادِرُونَ ﴿٩٥﴾
اِدْفَعْ بِالَّتِي هِيَ اَحْسَنُ السَّيِّئَةَ نَحْنُ اَعْلَمُ بِمَا يَصِفُونَ ﴿٩٦﴾
وَقُلْ رَبِّ اَعُوذُ بِكَ مِنْ هَمَزَاتِ الشَّيَاطِينِ ﴿٩٧﴾ وَاَعُوذُ بِكَ
رَبِّ اَنْ يَحْضُرُونِ ﴿٩٨﴾ حَتّٰى اِذَا جَاءَ اَحَدَهُمُ الْمَوْتُ قَالَ رَبِّ
ارْجِعُونِ ﴿٩٩﴾ لَعَلِّي اَعْمَلُ صَالِحًا فِيمَا تَرَكْتُ كَلَّا اِنَّهَا
كَلِمَةٌ هُوَ قَائِلُهَا وَمِنْ وَرَائِهِمْ بَرْزَخٌ اِلٰى يَوْمِ يُبْعَثُونَ ﴿١٠٠﴾
فَاِذَا نُفِخَ فِي الصُّورِ فَلَا اَنْسَابَ بَيْنَهُمْ يَوْمَئِذٍ وَلَا يَتَسَاءَلُونَ ﴿١٠١﴾
فَمَنْ ثَقُلَتْ مَوَازِينُهُ فَاُولٰئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿١٠٢﴾
وَمَنْ خَفَّتْ مَوَازِينُهُ فَاُولٰئِكَ الَّذِينَ خَسِرُوا اَنْفُسَهُمْ فِي جَهَنَّمَ
خَالِدُونَ ﴿١٠٣﴾ تَلْفَحُ وُجُوهَهُمُ النَّارُ وَهُمْ فِيهَا كَالِحُونَ ﴿١٠٤﴾

**90.** (Nexêr ne wisan e!) Bi rastî me ji wan re ya heq anî. Bêguman ew derewkar in.

(Di pir ayetên Qur'anê de ji muşrîkan pirsên mînahev hatine pirsîn û diyarbûye ku herdem ji van pirsan re bersiva "Allah" didin. Lê ev bersivên hanê ji wan nehatîye pejirandin û binê heqîqeta derewkarîya wan hatîye xêzkirin. Mirovekî ku bersiva van pirsan li ser bawerîyê wek "Allah" dide, gelo bi çi bahaneyê/hincetê tê îzahkirin ku dev ji Allah (ac) berde û pûtên bi destê xwe çêkiriye re perestîyê bike û digel hukmên Allah (ac) qanûnan çêbike û dev ji nîzama/pergala Allah (ac) berde û bide pey qanûn û îdeolojîyên beşerî? Ev kesên hanê dizanin û îqrar dikin ku Allah (ac) xaliqê erd û asîman e, ligel vê Allah (ac) di ayetekî de wiha ferman dike: "Bibêje: "Nexwe hûn in wî (Allah) yê ku erd di du rojan de xuliqandîye înkar dikin û jê re şirîkan/hevpişkan çêdikin? Ew Rabbê aleman e." (41/Fussîlet, 9) Şirîk çêkirina ji Allah (ac) re tê ser maneya înkar kirina Allah (ac). Welew ku muşrîk bi zimanê xwe bibêje: "Rabbê min Allah e" jî rewş naguhere. Ev rewşa wî ji dereweKî îbaret e ku; bi zimanê xwe hebûn û yekîtîya Allah (ac) îqrar dike lê bi azayên xwe û amelên xwe înkar dike.)

**91.** Allah, ji xwe re qet tu zarok negirtîye. Digel wî qet tu îlâh jî tunin. (Eger ji xeynî Allah hin îlâhên din hebûna) her îlâhek wê mexluqên xwe bigirtana (cem xwe) û biçûna û qismekî ji wan bi ser hinekan biketana. Allah, ji wan wesfên ku ew lê tînin munezzeh e/berî ye.

**92.** Ew alîmê (alema) xeybê û eşkerehîyê ye. Ji tiştên ku pê şirîkatîyê dikin berztir/bilindtir e.

**93.** Bibêje: "Rabbê min! Ew (ezab) a ku bi wê hatine tehdîtkirin eger biteqezî tu nîşanî min jî bidî..."

**94.** "Rabbê min! Min daxilê nav koma zilimkaran neke!"

**95.** Bêguman ew tiştê ku me wan pê tehdîd kiribû em dikarin nîşanî te bidin.

**96.** Xerabîyê ya bi herî xweşik re biqewirîne! Em bi ya ku ew lihevtînin herî çêtir dizanin.

**97.** Bibêje: "Rabbê min! Ji dapellandinên/(ji bo masîyetê) lê ketinên şeytan, ez xwe bi te diparêzim."

**98.** "Û bihevrebûyîna wan ya bi min re jî ez xwe bi te diparêzim Rabbê min!"

**99.** Axir ji wan ji yekî re dema ku mirin tê wiha dibêje: "Rabbê min! Min vegerîne."

**100.** "Hêvî heye ku ez ji bo tiştên min di pey xwe de hiştîye amelên salih bikim." Qet /Tu car! Gotina wî gotinek (betal) e. Û hetanî roja ku têne vejandin li pêşîya wan berzexek (ku tê de dimînin) heye.

**101.** Dema bi sûrê bê pifkirin di navbera wan de qet tu pêwendîyên eqrebatîyê namîne û ji hevdu pirsan jî nakin.

**102.** Êdî mêzêna/terezîya kî (bi îman û amelên salih) girantir bikişe, ha ev ên ha yên xelasbûyî bixwe ne.

**103.** Mêzêna/terezîya kî jî sivik bikişe evana; xwe bixwe xisirandine û yên di cehennemê de bêdawî bimînin jî ew in.

**104.** Agir rûyên wan dialêse/bi alastinê dişewitîne. (Lêvên wan bi qemçika/piştestûyê wan ve tê vezilandin û bi diranên xwe yê qîçbûyî) di nava wê de wekî qîçbeşkirî behitî dimînin.

اَلَمْ تَكُنْ اٰيَاتٖي تُتْلٰى عَلَيْكُمْ فَكُنْتُمْ بِهَا تُكَذِّبُونَ ﴿١٠٥﴾ قَالُوا
رَبَّنَا غَلَبَتْ عَلَيْنَا شِقْوَتُنَا وَكُنَّا قَوْمًا ضَٓالّٖينَ ﴿١٠٦﴾ رَبَّنَٓا اَخْرِجْنَا
مِنْهَا فَاِنْ عُدْنَا فَاِنَّا ظَالِمُونَ ﴿١٠٧﴾ قَالَ اخْسَؤُا فٖيهَا وَلَا تُكَلِّمُونِ ﴿١٠٨﴾
اِنَّهُ كَانَ فَرٖيقٌ مِنْ عِبَادٖي يَقُولُونَ رَبَّنَٓا اٰمَنَّا فَاغْفِرْ لَنَا
وَارْحَمْنَا وَاَنْتَ خَيْرُ الرَّاحِمٖينَ ﴿١٠٩﴾ فَاتَّخَذْتُمُوهُمْ سِخْرِيًّا حَتّٰٓى
اَنْسَوْكُمْ ذِكْرٖي وَكُنْتُمْ مِنْهُمْ تَضْحَكُونَ ﴿١١٠﴾ اِنّٖي جَزَيْتُهُمُ
الْيَوْمَ بِمَا صَبَرُٓوا اَنَّهُمْ هُمُ الْفَٓائِزُونَ ﴿١١١﴾ قَالَ كَمْ لَبِثْتُمْ فِي الْاَرْضِ
عَدَدَ سِنٖينَ ﴿١١٢﴾ قَالُوا لَبِثْنَا يَوْمًا اَوْ بَعْضَ يَوْمٍ فَسْـَٔلِ الْعَٓادّٖينَ ﴿١١٣﴾
قَالَ اِنْ لَبِثْتُمْ اِلَّا قَلٖيلًا لَوْ اَنَّكُمْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿١١٤﴾ اَفَحَسِبْتُمْ
اَنَّمَا خَلَقْنَاكُمْ عَبَثًا وَاَنَّكُمْ اِلَيْنَا لَا تُرْجَعُونَ ﴿١١٥﴾ فَتَعَالَى اللّٰهُ
الْمَلِكُ الْحَقُّ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ رَبُّ الْعَرْشِ الْكَرٖيمِ ﴿١١٦﴾ وَمَنْ يَدْعُ
مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ لَا بُرْهَانَ لَهُ بِهٖ فَاِنَّمَا حِسَابُهُ عِنْدَ رَبِّهٖ اِنَّهُ
لَا يُفْلِحُ الْكَافِرُونَ ﴿١١٧﴾ وَقُلْ رَبِّ اغْفِرْ وَارْحَمْ وَاَنْتَ خَيْرُ الرَّاحِمٖينَ ﴿١١٨﴾




**105.** (Ji wan re wiha tê gotin:) "Dema ku ayetên min ji we re dihatin xwendin, ma ew ên diderewandin ne hûn bûn?"

**106.** Wê bibêjin: "Rabbê me! Dilneşadîya me bi ser me ket û em qewmekî xerifî bûn."

**107.** "Rabbê me! Me ji vê derê derîne. Eger em careke din (li jiyana xwe yên berê) vegerin êdî em ji zaliman in."

**108.** (Allah) dibêje: "Dengê xwe bibirin/biqeşitin! Bi min re neaxivin."

**109.** Bi rastî, komek ji evdên min wiha digotin: "Rabbê me! Me îman anî, bi mexfîret û bi merhameta xwe bi me re bike! Tu bixêrtirê Rahîman î."

**110.** We tinazên xwe bi wan dikir. Heta ku (tinazkarîya we ya bi wan) zikirkirina min bi we dabû ji bîr kirin. Hûn tim bi wan dikenîyan.

**111.** Min jî ji ber sebra wan îro ew xelat kirin. Bêguman ew ên biqezenc ew bixwe ne.

**112.** (Allah) dibêje: "Hûn li ser rûyê erdê çend salan man?"

**113.** Wê bibêjin: "Rojek an jî bi qasî danekî rojê. Ji yên ku jimartine bipirse."

**114.** (Allah) dibêje: "Eger we zanîbûna hûn pir hindik mane."

**115.** "Nexwe we zen dikir ku me hûn bêhûde/belesebep xuliqandine û hûn ê nezivirin hizûra me?" (Ji bo meqseda xuliqandinê bnr. 38/ Sad, 27.)

**116.** Ew Allahê (hakimîyetê/ serwerîyê û yê ku di milkê xwe de wekî daxwaza xwe teserûfê dike) Melîk û ( heq û heqîqetê) Haq, (ji zenên wiha yên batil çi qas) berz e/bilind e. Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. Ew Rabbê arşê kerîm e.

**117.** Kî jî digel ku delîlekî wî tune û ligel Allah ji îlâhekî din re dûa/ lavahî bike êdî hisabê wî enceq li cem Rabbê wî ye. Bêguman kesên kafir, nagihîjin felahê/xelasîyê.

**118.** Bibêje: "Rabbê min bi mexfîret û bi merhameta xwe bi min raə bike. Tu bixêrtirê Rahîman î."

## 24. SÛREYA NÛR

*(Sûreya Nûr, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û şêst û çar (64) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya bîst û çaremîn e. Di ayeta 35. de ji ber ku nûra Allah (ac) tê teswîr kirin, bi navê sûreya Nûr hatîye navandin. Di vê sûreyê de serata distûrên şerîetê, ceza, hukmên curbicur ya der heqê jiyana kesîyatî û civakî û qaîdeyên li ser jiyana malbatî cih girtîye.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
سُورَةٌ اَنْزَلْنَاهَا وَفَرَضْنَاهَا وَاَنْزَلْنَا ف۪يهَٓا اٰيَاتٍ بَيِّنَاتٍ لَعَلَّكُمْ
تَذَكَّرُونَ ﴿١﴾ اَلزَّانِيَةُ وَالزَّان۪ي فَاجْلِدُوا كُلَّ وَاحِدٍ مِنْهُمَا مِائَةَ
جَلْدَةٍ وَلَا تَأْخُذْكُمْ بِهِمَا رَأْفَةٌ ف۪ي د۪ينِ اللّٰهِ اِنْ كُنْتُمْ تُؤْمِنُونَ
بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَلْيَشْهَدْ عَذَابَهُمَا طَٓائِفَةٌ مِنَ الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٢﴾ اَلزَّان۪ي
لَا يَنْكِحُ اِلَّا زَانِيَةً اَوْ مُشْرِكَةً وَالزَّانِيَةُ لَا يَنْكِحُهَٓا اِلَّا زَانٍ
اَوْ مُشْرِكٌ وَحُرِّمَ ذٰلِكَ عَلَى الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٣﴾ وَالَّذ۪ينَ يَرْمُونَ الْمُحْصَنَاتِ
ثُمَّ لَمْ يَأْتُوا بِاَرْبَعَةِ شُهَدَٓاءَ فَاجْلِدُوهُمْ ثَمَان۪ينَ جَلْدَةً وَلَا تَقْبَلُوا لَهُمْ
شَهَادَةً اَبَدًا وَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْفَاسِقُونَ ﴿٤﴾ اِلَّا الَّذ۪ينَ تَابُوا مِنْ بَعْدِ ذٰلِكَ
وَاَصْلَحُوا فَاِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿٥﴾ وَالَّذ۪ينَ يَرْمُونَ اَزْوَاجَهُمْ وَلَمْ يَكُنْ
لَهُمْ شُهَدَٓاءُ اِلَّٓا اَنْفُسُهُمْ فَشَهَادَةُ اَحَدِهِمْ اَرْبَعُ شَهَادَاتٍ بِاللّٰهِ اِنَّهُ لَمِنَ
الصَّادِق۪ينَ ﴿٦﴾ وَالْخَامِسَةُ اَنَّ لَعْنَتَ اللّٰهِ عَلَيْهِ اِنْ كَانَ مِنَ الْكَاذِب۪ينَ ﴿٧﴾
وَيَدْرَؤُا عَنْهَا الْعَذَابَ اَنْ تَشْهَدَ اَرْبَعَ شَهَادَاتٍ بِاللّٰهِ اِنَّهُ لَمِنَ الْكَاذِب۪ينَ ﴿٨﴾
وَالْخَامِسَةَ اَنَّ غَضَبَ اللّٰهِ عَلَيْهَٓا اِنْ كَانَ مِنَ الصَّادِق۪ينَ ﴿٩﴾
وَلَوْلَا فَضْلُ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ وَاَنَّ اللّٰهَ تَوَّابٌ حَك۪يمٌ ﴿١٠﴾

**1.** Ev, sûreyek e ku me ew nazil kiriye û (hukmên vedihewîne/îhtiwa dike) me ferz kiriye. Me tê de ayetên eşkere daxistîye da ku hûn şîret bigirin.

**2.** Jinê zinakar û zilamê zinakar her yekî ji wan sed darî li wan bixin. Eger hûn bi Allah û bi roja axîretê bawer in, dema hûn li ser wan hukmê/qanûna Allah tetbîq dikin li ber wan herduyan nekevin. Bila komek ji mumînan li ser cezayê wan bibin şahid.

**3.** Zilamê zinakar enceq bikaribe bi jineke zanîye/zinakar re an jî bi jineke mûşrîke re bizewice. Jina zanîye jî enceq zilamekî zinakar an jî yeki muşrîk bikaribe wê mehr bike. Ev, ji bo mumînan hatîye heramkirin.

**4.** Kesên ku bêbextîya zinayê davêjin ser jinên bi îffet/bi namûs û paşê nikarin (li ser rastîya îdîayên xwe) çar şahid bînin, hûn heştê dar/şiv li wan bixin û êdî ebedîyen şahidîya wan qebûl nekin. Ha ev ên hanê, fasiq bixwe ne.

**5.** Ew ên ku di pey vê de tobe dikin û (rewşa) xwe sererast dikin ne tê de. Bêguman Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**6.** Ew kesên ku jinên xwe (bi zinakarîyê) sûcdar dikin û ji xwe pê ve tu şahidên wan tunebin, şahidîya her yekî ji wan ev e ku çar caran wiha bibêjin: "Bi navê Allah sond dixwim ku ez ji rastbêjan im."

**7.** Cara pêncemîn wiha dibêje: "Eger ez derew dikim, laneta Allah li ser min be."

**8.** Eger jin jî çar caran li ser navê Allah sond bixwe û wiha bibêje: "Bêguman ew, ji derewkaran e." êdî ceza (yê zinayê) ji ser wê radibe.

**9.** Di cara pêncemîn de jî wiha dibêje: "Eger ew ji rastbêjan be xezeba Allah li ser min be."

**10.** Eger fezl û rahmeta Allah ne li ser we bûna û Allah (yê ku evdên xwe mûweffeqê tobeyê dike û tobeyan pirzêde qebûl dike) Tewwab û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm nebûya (wê rewşa we çawa bibûna)?

اِنَّ الَّذ۪ينَ جَٓاؤُ بِالْاِفْكِ عُصْبَةٌ مِنْكُمْۜ لَا تَحْسَبُوهُ شَرًّا لَكُمْۜ
بَلْ هُوَ خَيْرٌ لَكُمْۜ لِكُلِّ امْرِئٍ مِنْهُمْ مَا اكْتَسَبَ مِنَ الْاِثْمِۚ وَالَّذ۪ي
تَوَلّٰى كِبْرَهُ مِنْهُمْ لَهُ عَذَابٌ عَظ۪يمٌ ﴿١١﴾ لَوْلَٓا اِذْ سَمِعْتُمُوهُ ظَنَّ
الْمُؤْمِنُونَ وَالْمُؤْمِنَاتُ بِاَنْفُسِهِمْ خَيْرًاۙ وَقَالُوا هٰذَٓا اِفْكٌ مُب۪ينٌ ﴿١٢﴾
لَوْلَا جَٓاؤُ عَلَيْهِ بِاَرْبَعَةِ شُهَدَٓاءَۚ فَاِذْ لَمْ يَاْتُوا بِالشُّهَدَٓاءِ فَاُو۬لٰٓئِكَ عِنْدَ
اللّٰهِ هُمُ الْكَاذِبُونَ ﴿١٣﴾ وَلَوْلَا فَضْلُ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ
فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِ لَمَسَّكُمْ ف۪ي مَٓا اَفَضْتُمْ ف۪يهِ عَذَابٌ عَظ۪يمٌۚ ﴿١٤﴾
اِذْ تَلَقَّوْنَهُ بِاَلْسِنَتِكُمْ وَتَقُولُونَ بِاَفْوَاهِكُمْ مَا لَيْسَ لَكُمْ
بِه۪ عِلْمٌ وَتَحْسَبُونَهُ هَيِّنًاۗ وَهُوَ عِنْدَ اللّٰهِ عَظ۪يمٌ ﴿١٥﴾ وَلَوْلَٓا
اِذْ سَمِعْتُمُوهُ قُلْتُمْ مَا يَكُونُ لَنَٓا اَنْ نَتَكَلَّمَ بِهٰذَاۗ سُبْحَانَكَ هٰذَا
بُهْتَانٌ عَظ۪يمٌ ﴿١٦﴾ يَعِظُكُمُ اللّٰهُ اَنْ تَعُودُوا لِمِثْلِه۪ٓ اَبَدًا اِنْ كُنْتُمْ
مُؤْمِن۪ينَۚ ﴿١٧﴾ وَيُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمُ الْاٰيَاتِۜ وَاللّٰهُ عَل۪يمٌ حَك۪يمٌ ﴿١٨﴾
اِنَّ الَّذ۪ينَ يُحِبُّونَ اَنْ تَش۪يعَ الْفَاحِشَةُ فِي الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَهُمْ
عَذَابٌ اَل۪يمٌۙ فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِۜ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ وَاَنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿١٩﴾
وَلَوْلَا فَضْلُ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ وَاَنَّ اللّٰهَ رَؤُ۫فٌ رَح۪يمٌۚ ﴿٢٠﴾

**11.** Bêguman ew ên vê derewê anîn (û bêbextîya giran li Aîşe kirin) civatekî ji nav we ne. Zen nekin ku ev ji bo we şer/xerab e. (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, ew ji bo we xêr e. Her yekî ji wan re bi qasî gunehên kirine ceza heye. Ji wan ew ê ku vê (bêbextî) ya mezin hilgirtîye re jî ezabekî azîm heye.

**12.** Dema ku we ew bihîst, ma ne hewce bû ku mêr û jinên mumîn der heqê wê de bi dilpakî bigotana: "Bêşik ev bêbextîyeke eşkere ye!".

**13.** Ma ne hewce bû ku der barê vê (îftîrayê) de çar heb şahid bianîna? Çi dema wan şahid neanîn, êdî ew li îndallah/li cem Allah derewkar bixwe ne.

**14.** Eger li dinya û axîretê fezl û rahmeta Allah li ser we nebûya ji ber (wan gotegotên) ku we xwe noqî wê kiribû, wê ezabekî mezin bi we bigirta.

**15.** Wê demê we ew bi zimanê xwe ji hevdu radigihand û tiştên ku der heqê wan de agahîya we tune bû we bi devên xwe digot û we zen dikir ku ew tiştekî besîd/hêsan e. (Lê belê) ew, li îndallah/li cem Allah pir mezin e.

**16.** Dema ku we ew bihîst ma ne hewce bû ku we wiha bigota: "Li ser vê mijarê axaftin bi me nakeve, em te tenzîh dikin. Ev, îftîrayekî apeşkere ye."

**17.** Eger hûn mumîn bin, Allah vê şîretê li we dike ku cereke din ebedîyen berê xwe nedin tiştekî wiha.

**18.** Û Allah ji we re ayetên xwe beyan dike. Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**19.** Ew ên ku ji belavbûna fuhûşê di nava mumînan de dilxweş/kêfxweş in, ji wan re li dinya û axîretê ezabekî biêş û jan heye. Allah dizane û hûn nizanin.

**20.** Eger fezl û rahmeta Allah ne li ser we bûna û Allah, (li ser evdên xwe pir bi şefqet), Raûf û (li ser evdên xwe pir bi merhemet) Rahîm nebûya (wê rewşa we çawa bibûna)?




يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَتَّبِعُوا خُطُوَاتِ الشَّيْطَانِۜ وَمَنْ يَتَّبِعْ
خُطُوَاتِ الشَّيْطَانِ فَاِنَّهُ يَأْمُرُ بِالْفَحْشَٓاءِ وَالْمُنْكَرِۜ وَلَوْلَا فَضْلُ
اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ مَا زَكٰى مِنْكُمْ مِنْ اَحَدٍ اَبَدًاۙ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ
يُزَكّ۪ي مَنْ يَشَٓاءُۜ وَاللّٰهُ سَم۪يعٌ عَل۪يمٌ ﴿٢١﴾ وَلَا يَأْتَلِ اُو۬لُوا الْفَضْلِ
مِنْكُمْ وَالسَّعَةِ اَنْ يُؤْتُٓوا اُو۬لِي الْقُرْبٰى وَالْمَسَاك۪ينَ وَالْمُهَاجِر۪ينَ
ف۪ي سَب۪يلِ اللّٰهِۖ وَلْيَعْفُوا وَلْيَصْفَحُواۜ اَلَا تُحِبُّونَ اَنْ يَغْفِرَ اللّٰهُ
لَكُمْۜ وَاللّٰهُ غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿٢٢﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يَرْمُونَ الْمُحْصَنَاتِ
الْغَافِلَاتِ الْمُؤْمِنَاتِ لُعِنُوا فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِۖ وَلَهُمْ عَذَابٌ
عَظ۪يمٌۙ ﴿٢٣﴾ يَوْمَ تَشْهَدُ عَلَيْهِمْ اَلْسِنَتُهُمْ وَاَيْد۪يهِمْ وَاَرْجُلُهُمْ بِمَا
كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٢٤﴾ يَوْمَئِذٍ يُوَفّ۪يهِمُ اللّٰهُ د۪ينَهُمُ الْحَقَّ وَيَعْلَمُونَ
اَنَّ اللّٰهَ هُوَ الْحَقُّ الْمُب۪ينُ ﴿٢٥﴾ اَلْخَب۪يثَاتُ لِلْخَب۪يث۪ينَ وَالْخَب۪يثُونَ
لِلْخَب۪يثَاتِۚ وَالطَّيِّبَاتُ لِلطَّيِّب۪ينَ وَالطَّيِّبُونَ لِلطَّيِّبَاتِۚ اُو۬لٰٓئِكَ
مُبَرَّؤُ۫نَ مِمَّا يَقُولُونَۜ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَرِزْقٌ كَر۪يمٌ ﴿٢٦﴾ يَٓا اَيُّهَا
الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَدْخُلُوا بُيُوتًا غَيْرَ بُيُوتِكُمْ حَتّٰى تَسْتَأْنِسُوا
وَتُسَلِّمُوا عَلٰٓى اَهْلِهَاۜ ذٰلِكُمْ خَيْرٌ لَكُمْ لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ ﴿٢٧﴾

**21.** Gelî ew ên îmân anîne! Nedin pey pêgavên şeytan. Kî bide pey pêgavên şeytan bêguman ew, emrê fuhşîyat û munkeratê dike. Eger fezl û rahmeta Allah li ser we nebûna ji nav we tu kes ebedîyen pak û paqij nedibû. Lê Allah kî bixwaze wî pak û paqij dike. Allah (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**22.** Ji nav we ew ên xwedî fezîlet û dewlemend in, bila sond nexwin ku wê (ji malên xwe) nedin eqrebayên xwe û miskînan/hewcedaran û xîzanan û kesên fîsebîlîllah hîcretê kirine. Bila efû bikin û xweş bibînin (karên ku kirine li nedîtinê deynin). Qey hûn naxwazin ku Allah we efû bike? Allah (ew ê gunehên wan dibexşîne û disitirîne û evdên xwe ji aqubeta gunehên xerab mihafeza dike) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**23.** Ew ên bêbextîyan davêjin ser jinên mumîne û bi îffet/bi namûs li dinyayê jî û li axîretê jî têne lanet kirin. Ji bo wan ezabekî mezin heye.

**24.** Wê rojê, zimanên wan û destên wan û lingên wan li ser wan amelên ku kirine di aleyha wan de şahidî dikin.

**25.** Wê rojê Allah cezaya/berdêla ku wan heq kiriye bi awayekî bêkêmasî dide wan. Û wê bizanibin ku Allah (çavkanîya heq û heqîqetê) Haq û (delîlên hebûn û wehdanîyeta wî eşkere û ji evdên xwe re beyan dike û masûmîyeta kesên bêbextî li wan bûyî derdixe holê) Mubîn e.

**26.** Jinên xerab ji bo zilamên xerab in; zilamên xerab jî ji bo jinên xerab in; jinên qenc/paqij ji bo zilamên tahir/paqij in û zilamên tahir/paqij jî ji bo jinên paqij in (çêtir lêhatîyê hevdu ne). Evana, ji wan gotinên wan dûr in/berî ne. Ji wan re bexişandin/mexfîret û rizqekî bi rûmet heye.

**27.** Gelî ew ên îmân anîne! Ji xeynî mala xwe heta ku hûn destûrê nexwazin û silavê nedin ehlê malê nekevin hûndir. Ev, ji bo we herî bixêrtir e. Hêvî heye ku hûn şîret bigirin.

فَاِنْ لَمْ تَجِدُوا فِيهَٓا اَحَدًا فَلَا تَدْخُلُوهَا حَتّٰى يُؤْذَنَ لَكُمْۚ
وَاِنْ قِيلَ لَكُمُ ارْجِعُوا فَارْجِعُوا هُوَ اَزْكٰى لَكُمْۜ
وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ عَلِيمٌ ﴿٢٨﴾ لَيْسَ عَلَيْكُمْ جُنَاحٌ اَنْ تَدْخُلُوا
بُيُوتًا غَيْرَ مَسْكُونَةٍ فِيهَا مَتَاعٌ لَكُمْۜ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مَا تُبْدُونَ
وَمَا تَكْتُمُونَ ﴿٢٩﴾ قُلْ لِلْمُؤْمِنِينَ يَغُضُّوا مِنْ اَبْصَارِهِمْ
وَيَحْفَظُوا فُرُوجَهُمْۜ ذٰلِكَ اَزْكٰى لَهُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ خَبِيرٌ بِمَا
يَصْنَعُونَ ﴿٣٠﴾ وَقُلْ لِلْمُؤْمِنَاتِ يَغْضُضْنَ مِنْ اَبْصَارِهِنَّ
وَيَحْفَظْنَ فُرُوجَهُنَّ وَلَا يُبْدِينَ زِينَتَهُنَّ اِلَّا مَا ظَهَرَ مِنْهَا
وَلْيَضْرِبْنَ بِخُمُرِهِنَّ عَلٰى جُيُوبِهِنَّۖ وَلَا يُبْدِينَ زِينَتَهُنَّ
اِلَّا لِبُعُولَتِهِنَّ اَوْ اٰبَٓائِهِنَّ اَوْ اٰبَٓاءِ بُعُولَتِهِنَّ اَوْ اَبْنَٓائِهِنَّ اَوْ اَبْنَٓاءِ
بُعُولَتِهِنَّ اَوْ اِخْوَانِهِنَّ اَوْ بَنِٓي اِخْوَانِهِنَّ اَوْ بَنِٓي اَخَوَاتِهِنَّ
اَوْ نِسَٓائِهِنَّ اَوْ مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُهُنَّ اَوِ التَّابِعِينَ غَيْرِ اُولِي
الْاِرْبَةِ مِنَ الرِّجَالِ اَوِ الطِّفْلِ الَّذِينَ لَمْ يَظْهَرُوا عَلٰى عَوْرَاتِ
النِّسَٓاءِۖ وَلَا يَضْرِبْنَ بِاَرْجُلِهِنَّ لِيُعْلَمَ مَا يُخْفِينَ مِنْ زِينَتِهِنَّۜ
وَتُوبُٓوا اِلَى اللّٰهِ جَمِيعًا اَيُّهَ الْمُؤْمِنُونَ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ ﴿٣١﴾

**28.** Eger hûn li wê (malê) kesî nebînin heta destûr li we neyê dayîn nekevin hûndir (ê malan). Eger (digel xwestina we destûr nedin we û) ji we re bê gotin: "Vegerin!" hûn jî vegerin. (Li ber derî nesekinin. Veger) ji bo we herî paqijtir (û bi xêrtir) e. Allah, bi kar û kirinên we dizane.

**29.** Li ser we tu guneh tune ku hûn têkevin xanîyên ku tu kes tê de rûnanê û di wan de metaên we/tiştên bifeyda we hene. Allah bi ya ku hûn eşkere dikin jî û bi ya ku hûn vedişêrin jî dizane.

**30.** Ji zilamên mumîn re bibêje: "(Bila) çavên xwe (ji heramîyê) bigirin û îffetên xwe biparêzin." Ev, ji bo wan herî bixêrtir/paqijtir e. Bêguman Allah, bi kar û kirinên we dizane.

**31.** Ji jinên mumînê re jî bibêje: "(Bila) çavên xwe (ji heramîyê) bigirin û îffetên xwe biparêzin." Ew ên jiber xwe ve derdikevin ne tê de bila zînetên xwe jî dernexin/nîşan nedin. Bila terhîyên/çarikên serê xwe (bi awayê ku ser û sitû û singên wan binuxmîne) di ser berstûka/berqirika xwe de berdin. Bila zînetên xwe ji xeynî mêrên xwe û ji bavên xwe û ji xezûrên xwe û ji zaroyên xwe û ji kurên mêrên xwe (yên ji jinekî din welidî ne) û ji birayên xwe û ji birazîyên xwe û ji xwarzîyên xwe û ji jinên ji mala xwe û ji qerwaşên xwe (yên li ber destê wan in) û ji xizmetkarên xwe yên zilam (ku qet tu hewes û pêdivîya wan bi jinan nemaye) û ji zarokên xwe yên ku hêj bi awreta jinan tênagihîjin pê ve nîşanî tu kesî nedin. Ji bo ku zînetên wan ên veşartî fêm bibe/bê zanîn bila lingên xwe li erdê nedin. Gelî mûmînan! Hûn hemû bi hev re tobe bikin da ku hûn bigihîjin rizgarîyê/felahê.

وَاَنْكِحُوا الْاَيَامٰى مِنْكُمْ وَالصَّالِحٖينَ مِنْ عِبَادِكُمْ وَاِمَٓائِكُمْۜ
اِنْ يَكُونُوا فُقَرَٓاءَ يُغْنِهِمُ اللّٰهُ مِنْ فَضْلِهٖۜ وَاللّٰهُ وَاسِعٌ عَلٖيمٌ ﴿٣٢﴾
وَلْيَسْتَعْفِفِ الَّذٖينَ لَا يَجِدُونَ نِكَاحًا حَتّٰى يُغْنِيَهُمُ اللّٰهُ مِنْ فَضْلِهٖۜ
وَالَّذٖينَ يَبْتَغُونَ الْكِتَابَ مِمَّا مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْ فَكَاتِبُوهُمْ
اِنْ عَلِمْتُمْ فٖيهِمْ خَيْرًاۗ وَاٰتُوهُمْ مِنْ مَالِ اللّٰهِ الَّذٖٓي اٰتٰيكُمْۜ
وَلَا تُكْرِهُوا فَتَيَاتِكُمْ عَلَى الْبِغَٓاءِ اِنْ اَرَدْنَ تَحَصُّنًا لِتَبْتَغُوا
عَرَضَ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۜ وَمَنْ يُكْرِهْهُنَّ فَاِنَّ اللّٰهَ مِنْ بَعْدِ اِكْرَاهِهِنَّ
غَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿٣٣﴾ وَلَقَدْ اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكُمْ اٰيَاتٍ مُبَيِّنَاتٍ وَمَثَلًا
مِنَ الَّذٖينَ خَلَوْا مِنْ قَبْلِكُمْ وَمَوْعِظَةً لِلْمُتَّقٖينَ ﴿٣٤﴾ اَللّٰهُ نُورُ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ مَثَلُ نُورِهٖ كَمِشْكٰوةٍ فٖيهَا مِصْبَاحٌۜ اَلْمِصْبَاحُ
فٖي زُجَاجَةٍۜ اَلزُّجَاجَةُ كَاَنَّهَا كَوْكَبٌ دُرِّيٌّ يُوقَدُ مِنْ شَجَرَةٍ
مُبَارَكَةٍ زَيْتُونَةٍ لَا شَرْقِيَّةٍ وَلَا غَرْبِيَّةٍۙ يَكَادُ زَيْتُهَا يُضٖٓيءُ وَلَوْ
لَمْ تَمْسَسْهُ نَارٌۜ نُورٌ عَلٰى نُورٍۜ يَهْدِي اللّٰهُ لِنُورِهٖ مَنْ يَشَٓاءُۜ وَيَضْرِبُ اللّٰهُ
الْاَمْثَالَ لِلنَّاسِۜ وَاللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلٖيمٌۙ ﴿٣٥﴾ فٖي بُيُوتٍ اَذِنَ اللّٰهُ
اَنْ تُرْفَعَ وَيُذْكَرَ فٖيهَا اسْمُهُۙ يُسَبِّحُ لَهُ فٖيهَا بِالْغُدُوِّ وَالْاٰصَالِۙ ﴿٣٦﴾

**32.** Ji nav we ew ên azib/nezewicî ne, bi carîye û koleyên salih/qenc re bizewicînin. Eger feqîr bin, wê Allah wan bi lutfa xwe dewlemend bike. Allah (ew ê bi lutf û îhsana xwe hemû heyînan dorpêç dike) Wasî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**33.** Ew kesên derfeta/îmkana zewacê nabînin, hetanî ku Allah wan bi lutfa xwe dewlemend bike bila îffeta xwe biparêzin. Ji carîye û koleyên we yên dixwazin ku (ji koletîyê xelas bibin) bi we re mukatebe/peyman çêbikin hebin, bi (kole û carîye) yên ku hûn di wan de xêr dibînin re mukatebe/peyman deynin. Û ji malên ku Allah daye we bidin wan jî. Ji bo ku hûn ê menfaeta dinyayê bi dest xwe bixin carîyeyên ku dixwazin îffeta xwe biparêzin bi zordarî fuhûşê bi wan nedin kirin. Kî jî (ji bo fuhûşê) wan bide zorê, bêguman Allah, ji bo zordestîya li ser wan (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**34.** Sond be, me ji we re ayetên raveker/eşkere (ku bibin) mîsalên wan ên berî we hatine û çûne û ji Mutteqîyan re şîret in nazil kiriye.

**35.** Allah, nûra erd û esmanan e. Mîsala nûra wî dişibe fanosek/kulekek ku di navê de çirayek hebe (û ronahî jê belav dibe). Ew çira jî di nava şûşeyekê de ye. Ew şûşe jî her weke ku stêrkeke mîna durrê/ incîyê be. Ji dareke zeytûnê ku ne aîdê rojhilat û rojava ye tê pêxistin. Agir (bi wê) negire jî hindik dimîne donê/zeyta wê şewlê dide. Nûr li ser nûrê ye. Allah, kî bivê ber bi nûra xwe ve hîdayet dike. Allah, mîsalan dide însanan. Allah, bi her tiştî dizane. (Wekî ku ji qisma dawîya ayetê fêm dibe di vê mîsâlê de hîdayeta Allah (ac) û tecellîya wê ya li ser kesê mumîn hatîye vegotin. Ew qelbên ku Allah (ac) bi îman û bi Qur'an û bi ilmê ronahî kiriye ha wisan e… Bersiva pirsa 'lêgerîna vê nûr û hîdayetê wê çawa be û li ku derê be?' jî di ayeta piştî vê de tê dayîn.)

**36.** (Ew nûr) di wan malan (mizgeftan) de ye ku Allah, ji bo zikirkirin û berzkirin/bilindkirina Allah destûrê daye wan. Li wê derê sibeh û êvaran wî tesbîh dikin.

رِجَالٌ لَا تُلْهِيهِمْ تِجَارَةٌ وَلَا بَيْعٌ عَنْ ذِكْرِ اللّٰهِ وَاِقَامِ الصَّلٰوةِ
وَاِيتَاۤءِ الزَّكٰوةِ يَخَافُونَ يَوْمًا تَتَقَلَّبُ فِيهِ الْقُلُوبُ وَالْاَبْصَارُ ﴿٣٧﴾
لِيَجْزِيَهُمُ اللّٰهُ اَحْسَنَ مَا عَمِلُوا وَيَزِيدَهُمْ مِنْ فَضْلِهِ وَاللّٰهُ
يَرْزُقُ مَنْ يَشَاۤءُ بِغَيْرِ حِسَابٍ ﴿٣٨﴾ وَالَّذِينَ كَفَرُوا اَعْمَالُهُمْ
كَسَرَابٍ بِقِيعَةٍ يَحْسَبُهُ الظَّمْاٰنُ مَاۤءً حَتّٰى اِذَا جَاۤءَهُ لَمْ يَجِدْهُ
شَيْـًٔا وَوَجَدَ اللّٰهَ عِنْدَهُ فَوَفّٰيهُ حِسَابَهُ وَاللّٰهُ سَرِيعُ الْحِسَابِ ﴿٣٩﴾
اَوْ كَظُلُمَاتٍ فِي بَحْرٍ لُجِّيٍّ يَغْشٰيهُ مَوْجٌ مِنْ فَوْقِهِ مَوْجٌ
مِنْ فَوْقِهِ سَحَابٌ ظُلُمَاتٌ بَعْضُهَا فَوْقَ بَعْضٍ اِذَا اَخْرَجَ يَدَهُ لَمْ يَكَدْ
يَرٰيهَا وَمَنْ لَمْ يَجْعَلِ اللّٰهُ لَهُ نُورًا فَمَا لَهُ مِنْ نُورٍ ﴿٤٠﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ
يُسَبِّحُ لَهُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَالطَّيْرُ صَاۤفَّاتٍ كُلٌّ قَدْ عَلِمَ
صَلَاتَهُ وَتَسْبِيحَهُ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ بِمَا يَفْعَلُونَ ﴿٤١﴾ وَلِلّٰهِ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ وَاِلَى اللّٰهِ الْمَصِيرُ ﴿٤٢﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ يُزْجِي سَحَابًا ثُمَّ
يُؤَلِّفُ بَيْنَهُ ثُمَّ يَجْعَلُهُ رُكَامًا فَتَرَى الْوَدْقَ يَخْرُجُ مِنْ خِلَالِهِ
وَيُنَزِّلُ مِنَ السَّمَاۤءِ مِنْ جِبَالٍ فِيهَا مِنْ بَرَدٍ فَيُصِيبُ بِهِ مَنْ يَشَاۤءُ
وَيَصْرِفُهُ عَنْ مَنْ يَشَاۤءُ يَكَادُ سَنَا بَرْقِهِ يَذْهَبُ بِالْاَبْصَارِ ﴿٤٣﴾

**37.** Ewana zilam (ên wisan) in ku ne tîcaret û ne jî danûsitendin, wan ji bîranîna Allah û ji kirina nimêjê û ji dayîna zekâtê paş ve nahêle. Ew ji roja ku qelb û çav (ji toqînê) têne qelibandin, ditirsin.

**38.** Da ku Allah ji ber kar û kirinên wan ên herî xweşik wan xelat bike û ji lutfa xwe ji wan re hê zêdetir bide (wî tesbîh dikin û nimêj dikin û zekâtê didin û xwe nakin êsîrê tîcaret û danûstendinê). Allah, ji kî re bivê, bêhisab/bêhejmar wî dirizqîne.

**39.** (Rewşa) amelên kafiran weke leylaneke/revrevikeke li çolê ye. Kesê ku tî bûye dibêje qey ew av e. Dema ku digihîje wê derê tiştekî nabîne. Li wê derê Allah dibîne. Allah, berdêla/gerewa kar û kirinên wan bêkêmasî dide. Allah, hisaban pir zû dibîne.

**40.** An jî (rewşa amelê kafiran) wek tarîtîyên di behreke kûr de ye. Pêlek wê (tarîtîyê) dinixûmîne. Wê pêlê (jî pêleke din) dinixûmîne. Li ser wê jî ewr hene. Tarîtîyên (wisan ku ew tarîtî) bi ser hevdu ketine... Eger destê xwe derêxe (ji zora tarîtîyê) hema hema wê destê xwe jî nikaribe bibîne. Eger Allah nûr nedabe kesekî, ji bo wî qet bi tu awayî nûr tune.

(Mînaka yekem ji bo wan kafiran e ku însanan gazî kufrê dikin û ji bo batilên xwe dixebitin û zen dikin ku tiştên qenc dikin. Roja qiyametê hemû hêvîyên wan weke leylanê/revrevikê dibe hîç/ne tu tişt. Mîsala duyem jî ji bo wan însanan e ku bi çavekorî didin pey serok û lîderên xwe û li dij heqîqetê kor û ker û lal in û heyata wan di tarîtîya zen û guman û xurafe û cehaletê de dibore.)

**41.** Ma qey tu nabînî li erd û esmanan her çi hebe û teyrên ref bi ref difirin bi tevahî Allah tesbîh dikin? Her yek ji wan bi nimêj û tesbîhên xwe (ka wê çawa bikin) dizanin. Allah, zanayê fiêlên wan e.

**42.** Serwerîya/hakimîyeta erd û esmanan aîdê Allah e. Û veger jî bi bal Allah ve ye.

**43.** Ma tu nabînî ku Allah ewran diajo û paşê wan li cem hev dicivîne û li ser hevdu kom dike? Axir tu dibînî ku baran ji nava wan (ewran) derdikeve. Ji asîman ewrên weke çiyan ku navê de teyrok/zîpik hene dadixîne. Ew ji kî re bixwaze îsabetî wî dike û ji kî re jî bivê jê vedigerîne. Hindik dimîne ku şewqa birûskê çavan biqemişîne û kor bike.

يُقَلِّبُ اللّٰهُ الَّيْلَ وَالنَّهَارَۜ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَعِبْرَةً لِاُو۬لِي الْاَبْصَارِ ﴿٤٤﴾ وَاللّٰهُ
خَلَقَ كُلَّ دَٓابَّةٍ مِنْ مَٓاءٍۚ فَمِنْهُمْ مَنْ يَمْش۪ي عَلٰى بَطْنِه۪ۚ وَمِنْهُمْ
مَنْ يَمْش۪ي عَلٰى رِجْلَيْنِۚ وَمِنْهُمْ مَنْ يَمْش۪ي عَلٰٓى اَرْبَعٍۜ يَخْلُقُ اللّٰهُ
مَا يَشَٓاءُۜ اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿٤٥﴾ لَقَدْ اَنْزَلْنَٓا اٰيَاتٍ
مُبَيِّنَاتٍۜ وَاللّٰهُ يَهْد۪ي مَنْ يَشَٓاءُ اِلٰى صِرَاطٍ مُسْتَق۪يمٍ ﴿٤٦﴾ وَيَقُولُونَ
اٰمَنَّا بِاللّٰهِ وَبِالرَّسُولِ وَاَطَعْنَا ثُمَّ يَتَوَلّٰى فَر۪يقٌ مِنْهُمْ مِنْ بَعْدِ ذٰلِكَۜ
وَمَٓا اُو۬لٰٓئِكَ بِالْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٤٧﴾ وَاِذَا دُعُٓوا اِلَى اللّٰهِ وَرَسُولِه۪ لِيَحْكُمَ
بَيْنَهُمْ اِذَا فَر۪يقٌ مِنْهُمْ مُعْرِضُونَ ﴿٤٨﴾ وَاِنْ يَكُنْ لَهُمُ الْحَقُّ
يَأْتُٓوا اِلَيْهِ مُذْعِن۪ينَۜ ﴿٤٩﴾ اَف۪ي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ اَمِ ارْتَابُٓوا اَمْ يَخَافُونَ
اَنْ يَح۪يفَ اللّٰهُ عَلَيْهِمْ وَرَسُولُهُۜ بَلْ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الظَّالِمُونَ ﴿٥٠﴾
اِنَّمَا كَانَ قَوْلَ الْمُؤْمِن۪ينَ اِذَا دُعُٓوا اِلَى اللّٰهِ وَرَسُولِه۪ لِيَحْكُمَ
بَيْنَهُمْ اَنْ يَقُولُوا سَمِعْنَا وَاَطَعْنَاۜ وَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٥١﴾
وَمَنْ يُطِعِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ وَيَخْشَ اللّٰهَ وَيَتَّقْهِ فَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ
الْفَٓائِزُونَ ﴿٥٢﴾ وَاَقْسَمُوا بِاللّٰهِ جَهْدَ اَيْمَانِهِمْ لَئِنْ اَمَرْتَهُمْ لَيَخْرُجُنَّۜ
قُلْ لَا تُقْسِمُواۚ طَاعَةٌ مَعْرُوفَةٌۜ اِنَّ اللّٰهَ خَب۪يرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿٥٣﴾

**44.** Allah, şev û rojê li hev vedigerîne. Bêguman di vêya de ji ew ên xwedî besîret re îbret heye.

**45.** Allah her candarekî/zindîyekî ji avê xuliqand. Hinek ji wan li ser zikê xwe dimeşin/bi markî digerin û hinek li ser du lingan û hinek jî li ser çar (ling) an dimeşin. Allah çi daxwaz bike dixuliqîne. Bêguman Allah li ser her tiştî qadir e.

**46.** Sond be me ji we re ayetên eşkere/raveker nazil kiriye. Allah, kî bixwaze wî rasterê dike.

**47.** Dibêjin: “Me îman bi Allah û bi Rasûlê wî anî.” Piştî vêya komek ji wan (di pey vê soza xwe de) rû vedigerînin. Evana ne mumîn in.

(Qur'an rû vegerandina wan bi peyva “tewellî” navandîye. Di îstilaha Qur'anê de maneya “tewellî” rû vegerandina ji amelê ye. (Bnr.75/Qiyamet, 31-32) Dema ku wan gotin “me îman anî.” û paşê rû vegerandin, ev îdîaya wan qebûl nebû û wek mumîn nehatin pejirandin. Wekî din ji bo betalbûna îmana bê amel bnr. 6/En'am, 158)




**48.** Dema ji bo ku Allah û Rasûlê wî di navbera wan de hikum bide, bang li wan tê kirin (tu lê dinêrî ku) komek ji wan rû vegerandine.

**49.** Eger heq bi dilê wan be, bi lezûbez tên (û ji hukim re) sitûyê xwe ditewînin.

**50.** Erê ma di qelbên wan de nexweşî/maraz heye? Nexwe ketin gumanê? An jî ditirsin ku Allah û Rasûlê wî wê neheqîyê li wan bike? (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, evana zalim bixwe ne.

**51.** Ji bo ku di navbera wan de hukim bide, dema bi bal hukmê Allah û Rasûlê wî ve bên vêxwendin gotina mumînan ev e: “Me bihîst û em îtaet dikin.” Ha ew ên ku xelas bûne ev bixwe ne.

(Ferqa di navbera munafiqên ku bi Allah (ac) û bi roja axîretê nebawer in û mumînên bi dilsozî îman anîne li ber çavan hatîye dayîn. Kesên mumîn, eger di leha wan an di aleyha wan (elenî an selenî) be jî dema bi bal hukmê Qur'an û sunnetê ve bên vexwendin îcabet dikin. Lê kesên munafiq, dema hizir bikin ku wê encam di leha wan de be îcabetî vexwendinê dikin; eger hizir bikin ku wê encam di aleyha wan de be an jî ji qerara bê dayîn ne ewle bin, serî li rê û rêbazên din didin û ji hukmên Allah rû vedigerînin. (Bnr. 4/Nîsa, 60))

**52.** Kî jî îtaetê Allah û Rasûlê wî bike û ji Allah (bi rêzdarî) bitirse û (ji ezabê wî) xwe biparêze, yên kesbdar/biqezenc in, ew bixwe ne.

**53.** Hetanî ji wan hat bi hemû hêza xwe sond xwarin ku tu emrê şer li wan bikî wê bi te re derkevin şer. Bibêje: “Sond nexwin, îtaetê li ser marûfê (bikin). Allah, ji amelên we agahdar e.”

قُلْ اَطِيعُوا اللّٰهَ وَاَطِيعُوا الرَّسُولَۚ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَاِنَّمَا عَلَيْهِ مَا حُمِّلَ
وَعَلَيْكُمْ مَا حُمِّلْتُمْۜ وَاِنْ تُطِيعُوهُ تَهْتَدُواۜ وَمَا عَلَى الرَّسُولِ
اِلَّا الْبَلَاغُ الْمُبِينُ ﴿٥٤﴾ وَعَدَ اللّٰهُ الَّذِينَ اٰمَنُوا مِنْكُمْ وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ لَيَسْتَخْلِفَنَّهُمْ فِي الْاَرْضِ كَمَا اسْتَخْلَفَ الَّذِينَ
مِنْ قَبْلِهِمْۖ وَلَيُمَكِّنَنَّ لَهُمْ دِينَهُمُ الَّذِي ارْتَضٰى لَهُمْ
وَلَيُبَدِّلَنَّهُمْ مِنْ بَعْدِ خَوْفِهِمْ اَمْنًاۜ يَعْبُدُونَنِي لَا يُشْرِكُونَ
بِي شَيْـًٔاۜ وَمَنْ كَفَرَ بَعْدَ ذٰلِكَ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْفَاسِقُونَ ﴿٥٥﴾ وَاَقِيمُوا
الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا الزَّكٰوةَ وَاَطِيعُوا الرَّسُولَ لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ ﴿٥٦﴾
لَا تَحْسَبَنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا مُعْجِزِينَ فِي الْاَرْضِۚ وَمَاْوٰيهُمُ النَّارُۜ
وَلَبِئْسَ الْمَصِيرُ ﴿٥٧﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا لِيَسْتَاْذِنْكُمُ الَّذِينَ
مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْ وَالَّذِينَ لَمْ يَبْلُغُوا الْحُلُمَ مِنْكُمْ ثَلٰثَ
مَرَّاتٍۜ مِنْ قَبْلِ صَلٰوةِ الْفَجْرِ وَحِينَ تَضَعُونَ ثِيَابَكُمْ مِنَ الظَّهِيرَةِ
وَمِنْ بَعْدِ صَلٰوةِ الْعِشَٓاءِۗ ثَلٰثُ عَوْرَاتٍ لَكُمْۜ لَيْسَ عَلَيْكُمْ
وَلَا عَلَيْهِمْ جُنَاحٌ بَعْدَهُنَّۜ طَوَّافُونَ عَلَيْكُمْ بَعْضُكُمْ عَلٰى بَعْضٍۜ
كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمُ الْاٰيَاتِۜ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌ ﴿٥٨﴾

**54.** Bibêje: “Îtaeta Allah bikin! Îtaeta pêxember bikin! Eger hûn rû vegerînin berpirsîyarîya/mesûlîyeta wî (teblîxkirin) li ser wî ye û pêkanîna berpirsîyarîya we jî (îtaet) li ser we ye. (Herkes ji xwe bixwe mesûl e.) Eger hûn îtaeta wî bikin, hûn ê bigihîjin hîdayetê. Wezîfeya pêxember ji teblîxeke eşkere pê ve ne tiştekî din e.

**55.** Allah ji we ew ên îman anîne û amelên salih kirine re wead kiriye: Çawa li ser rûyê erdê serwerî dabû ew ên berîya wan û wê wan jî li ser rûyê erdê hikumran bike û li ser dînê ku ji bo wan razî ye wê hêz/îqtîdar bide wan û piştî tirsa ku tê de bûn wê wan bigihîne ewlehîyê. Ew (ên ku min wead li wan kirine) ji min re îbadet dikin û qet tu tiştî ji min re şirîk çênakin. Kî jî piştî vêya bibe kafir, ha ew ên fasiq ew bixwe ne.

(Ji bo ku îslam li ser rûyê erdê hâkim bibe û ji bo ew serfirazîya/serwerîya ku Allah (ac) li mumînan wead kiriye pêk bê girêdayîya çar şertan e:

a. Îman. (Bnr. 1/Fatîhe, 5)
b. Amelê salih. (Bnr. 18/Kehf, 110)
c. Îbadeta bitenê ji Allah re. (Bnr. 6/En’am, 162-163)
d. Jê re şirîk neçêkirina qet tu tiştî. (Bnr. 4/Nîsa, 48)

Di muqabilê van her çar şertan de sê tişt jî hatîye wead kirin: Xîlafet û xwedî hêz bûna di dîn de û ewledarî. Ayetê kerîme bi zimnî îşaretê heqîqetekî din dike: Dema ji van şertan yek an jî hemû bê îhlal kirin wê ev aqubeta çarenîn/jênerev derkeve pêşîya wan: Ji terefê hin kesên din ve birêveberbûn, ketina rewşa belengazîyê û jiyaneke bi xof û tirs.)

**56.** Nimêjê rasterast bikin û zekâtê bidin û îtaeta pêxember bikin da ku merhamet li we bê kirin.

**57.** Tu hizir neke ew ên kafir wê bikaribin ku li ser rûyê erdê (ji pêkanîna weada xwe) wê me aciz bihêlin! Sitargeha wan agir e. Ew çi cihlêvegerekî xerab e.

**58.** Gelî ew ên îmân anîne! Ew (carîye) ên di bin destên we de ne û ew ên hêj balix nebûne bila sê caran ji we destûrê bixwazin: Berîya nimêja sibehê û dema nîvro (ji bo îstirahetê) hûn cilên xwe dertînin û piştî nimêja eşayê. Ev her sê dan (ên hanê dibe ku hûn ne wergirtî/lixwekirî bin) ji we re mahrem in. Ji xeynî van her sê danan (ku bêdestûr hûn bêne cem hevdu) ji we û ji wan re gunehek tune. Ew li dor we digerin/diçin û tên cem we. Dibe ku hûn jî li dor wan digerin û diçin û tên cem wan. Allah, ji we re ayetan wiha beyan dike. Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

وَاِذَا بَلَغَ الْاَطْفَالُ مِنْكُمُ الْحُلُمَ فَلْيَسْتَأْذِنُوا كَمَا اسْتَأْذَنَ
الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْۜ كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمْ اٰيَاتِهٖۜ
وَاللّٰهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌ ﴿٥٩﴾ وَالْقَوَاعِدُ مِنَ النِّسَٓاءِ الّٰتِي
لَا يَرْجُونَ نِكَاحًا فَلَيْسَ عَلَيْهِنَّ جُنَاحٌ اَنْ يَضَعْنَ
ثِيَابَهُنَّ غَيْرَ مُتَبَرِّجَاتٍ بِزِينَةٍۜ وَاَنْ يَسْتَعْفِفْنَ
خَيْرٌ لَهُنَّۜ وَاللّٰهُ سَمِيعٌ عَلِيمٌ ﴿٦٠﴾ لَيْسَ عَلَى الْاَعْمٰى
حَرَجٌ وَلَا عَلَى الْاَعْرَجِ حَرَجٌ وَلَا عَلَى الْمَرِيضِ حَرَجٌ
وَلَا عَلٰٓى اَنْفُسِكُمْ اَنْ تَأْكُلُوا مِنْ بُيُوتِكُمْ اَوْ بُيُوتِ
اٰبَٓائِكُمْ اَوْ بُيُوتِ اُمَّهَاتِكُمْ اَوْ بُيُوتِ اِخْوَانِكُمْ
اَوْ بُيُوتِ اَخَوَاتِكُمْ اَوْ بُيُوتِ اَعْمَامِكُمْ اَوْ بُيُوتِ
عَمَّاتِكُمْ اَوْ بُيُوتِ اَخْوَالِكُمْ اَوْ بُيُوتِ خَالَاتِكُمْ
اَوْ مَا مَلَكْتُمْ مَفَاتِحَهُٓ اَوْ صَدِيقِكُمْۜ لَيْسَ عَلَيْكُمْ جُنَاحٌ
اَنْ تَأْكُلُوا جَمِيعًا اَوْ اَشْتَاتًاۜ فَاِذَا دَخَلْتُمْ بُيُوتًا فَسَلِّمُوا
عَلٰٓى اَنْفُسِكُمْ تَحِيَّةً مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ مُبَارَكَةً طَيِّبَةًۜ
كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمُ الْاٰيَاتِ لَعَلَّكُمْ تَعْقِلُونَ ﴿٦١﴾

**59.** Dema zarokên we balix bûn, weke ku ew ên (mezin) destûr dixwestin bila ew jî (her dem) destûrê bixwazin. Herwiha Allah ayetên xwe ji we re eşkere dike. Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**60.** Ew jinên ketî ku ji zewacê hêvî birîne, beyî ku zînetên xwe nîşan bidin ji ber derxistina libasên xwe yên der, ji wan re tu guneh tune. Allah (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**61.** Li ser yê kor mehzûr tune û li ser yê qop/kulek mehzûr tune û li ser yê nexweş mehzûr tune. Li ser we jî tu guneh tuneye ku hûn ji mala/ji xanîyên xwe an ji mala bavên xwe an ji mala dayîkên xwe an ji mala birayên xwe an ji mala xuşk û birayên xwe an ji mala apên xwe an ji mala metên xwe an ji mala xalên xwe an ji mala xatîyên xwe an ji malên ku miftên wan di destê we de ne an jî ji malên hevalên xwe xwarin bixwin. Hûn tev bi hev re an ji hev cihê bixwin jî li ser we qet tu gunehek/mehzûrek tune. Dema hûn ketin malan ji alîyê Allah ve silaveke mûbarek û xweş/pak bidin hevdu. Allah, ji bo ku hûn aqil bigirin ji we re ayetan eşkere dike.

اِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ الَّذٖينَ اٰمَنُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِهٖ وَاِذَا كَانُوا مَعَهُ
عَلٰٓى اَمْرٍ جَامِعٍ لَمْ يَذْهَبُوا حَتّٰى يَسْتَاْذِنُوهُۜ اِنَّ الَّذٖينَ يَسْتَاْذِنُونَكَ
اُو۬لٰٓئِكَ الَّذٖينَ يُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَرَسُولِهٖۚ فَاِذَا اسْتَاْذَنُوكَ لِبَعْضِ
شَاْنِهِمْ فَاْذَنْ لِمَنْ شِئْتَ مِنْهُمْ وَاسْتَغْفِرْ لَهُمُ اللّٰهَۜ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ
رَحٖيمٌ ﴿٦٢﴾ لَا تَجْعَلُوا دُعَٓاءَ الرَّسُولِ بَيْنَكُمْ كَدُعَٓاءِ بَعْضِكُمْ
بَعْضًاۜ قَدْ يَعْلَمُ اللّٰهُ الَّذٖينَ يَتَسَلَّلُونَ مِنْكُمْ لِوَاذًاۚ فَلْيَحْذَرِ الَّذٖينَ
يُخَالِفُونَ عَنْ اَمْرِهٖٓ اَنْ تُصٖيبَهُمْ فِتْنَةٌ اَوْ يُصٖيبَهُمْ عَذَابٌ اَلٖيمٌ ﴿٦٣﴾
اَلَٓا اِنَّ لِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ قَدْ يَعْلَمُ مَٓا اَنْتُمْ عَلَيْهِۜ وَيَوْمَ
يُرْجَعُونَ اِلَيْهِ فَيُنَبِّئُهُمْ بِمَا عَمِلُواۜ وَاللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلٖيمٌ ﴿٦٤﴾

سُورَةُ الْفُرْقَانِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سَبْعٌ وَسَبْعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
تَبَارَكَ الَّذٖي نَزَّلَ الْفُرْقَانَ عَلٰى عَبْدِهٖ لِيَكُونَ لِلْعَالَمٖينَ
نَذٖيرًاۙ ﴿١﴾ اَلَّذٖي لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَلَمْ يَتَّخِذْ وَلَدًا وَلَمْ
يَكُنْ لَهُ شَرٖيكٌ فِي الْمُلْكِ وَخَلَقَ كُلَّ شَيْءٍ فَقَدَّرَهُ تَقْدٖيرًا ﴿٢﴾

**62.** Mumîn ew kes in ku; îman bi Allah û bi pêxemberê wî tînin û dema ku li ser kareke komelî (ya cemaeta îslâmê eleqedar dike) de ligel wî ne, berîya ku destûrê jê bixwazin jê naveqetin û naçin. Bêguman ew ên ku ji te destûr dixwazin, ew ên ku îman bi Allah û bi pêxemberê wî anîne ew in. Dema ku ew ji bo hin karên xwe destûr ji te bixwazin êdî tu ji kîjanî re dixwazî destûrê bidê û ji bo wan ji Allah mexfîretê bixwaze. Bêguman Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**63.** Hûn weke ku di navbera xwe de gazî hevdu dikin wisa gazî pêxember nekin. Allah, ji nav we bi wan ên ku di pişt hev de vedişêrin û (bê destûr) xwe dan alî dizane. Ew ên bêemrîya wî kirine bila ji fitneyeke ku wê bê serê wan an jî ji ezabeke biêş û jan bitirsin.

(Ji vê ayetê û ya berîya wê em du heqîqetên giring fêm dikin:

a. Di çalakîyên/fealîyetên mumînan yên cemaî/komdarî de destûr sitendin pir giring e.

b. Rasûlullah (ass), ne posteger e. Di çalakîyên leşkerî û sîyasî de jî ew kesên muxalefetê emrê wî kirine hatine tehdîtkirin. "Îtaeta ji Pêxember re, îtaeta ji Allah re ye."

Gotina qaîde (4/Nîsa, 80) û tehdîda "Ew ên muxalefetê wî dikin..." (24/Nûr, 63) ku li ser bûyerên civakî û cemaî de hatîye îzah kirin divê li ser vê mijarê qenc bê fikirîn ku ev mijar ji hêla nîşandana cîrewşa/pozisyona Rasûlullah (ass) pir giring e. Allah (ac) ne bitenê di ayetên tên xwendin de, di her qad û mijarî de îtaetkarîya wî û dûrketina ji dijberîya wî parastinê daxwaz dike. Wekî din bnr. 16/Nahl, 44)

**64.** Baldar bin/Dîqat bikin! Bêguman çi tiştên li erd û esmanan hene hemû aîdê Allah in. (Ew) tiştên ku hûn li ser in muheqeq pê dizane. Ew roja ku wê lê bêne vegerandin dê wan ji karên wan agahdar bike. Allah, zanayê her tiştî ye.

## 25. SÛREYA FURQÂN

*(Sûreya Furqân, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heftê û heft (77) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya bîst û pêncemîn e. Sûreya Furqân navê xwe ji peyva "Furqân" ya di ayeta yekemîn de dibore û navek ji navên Qur'anê ye sitendîye. "Furqân" tê ser maneya 'ji hevdu veqetandina heq û batil.' Di vê sûreyê de mijarên bingehîn ev in: Muhammed (ass) ji hemû însanan re wek pêxember hatîye şandin, dema teblîx û vexwendinê de zorahîyên ku rastî wan hatîye, kok qelandina şirkê û hin mînakên ji serpêhatîyên qewmên berê.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ew (Allah) ê ji bo ku ji aleman re bibe hişyarker Furqan (Kitêba heq û batil ji hevdu vediqetîne) li ser evdê xwe daxistîye çiqas berz û çiqas mubarek e.

(Ji bo meqseda nazil kirina Kitêbê bnr. 4/Nîsa, 105)

**2.** Ew (Allah) e ku; serwerîya/hakimîyeta erd û esmanan aîdê wî ye. Wî, ji xwe re zarok negirtîye. Di milk/hakimîyet/serwerîyê de jî şirîkê wî tunin. Her tiştî xuliqandîye û (mexluqên xwe li ser pergalek û pîvanek) teqdîr kiriye.

وَاتَّخَذُوا مِنْ دُونِهِ اٰلِهَةً لَا يَخْلُقُونَ شَيْـًٔا وَهُمْ
يُخْلَقُونَ وَلَا يَمْلِكُونَ لِاَنْفُسِهِمْ ضَرًّا وَلَا نَفْعًا
وَلَا يَمْلِكُونَ مَوْتًا وَلَا حَيٰوةً وَلَا نُشُورًا ﴿٣﴾ وَقَالَ الَّذِينَ
كَفَرُوا اِنْ هٰذَا اِلَّا اِفْكٌ افْتَرٰيهُ وَاَعَانَهُ عَلَيْهِ قَوْمٌ
اٰخَرُونَ فَقَدْ جَاؤُ ظُلْمًا وَزُورًا ﴿٤﴾ وَقَالُوا اَسَاطِيرُ الْاَوَّلِينَ
اكْتَتَبَهَا فَهِيَ تُمْلٰى عَلَيْهِ بُكْرَةً وَاَصِيلًا ﴿٥﴾ قُلْ اَنْزَلَهُ
الَّذِي يَعْلَمُ السِّرَّ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ اِنَّهُ كَانَ غَفُورًا
رَحِيمًا ﴿٦﴾ وَقَالُوا مَالِ هٰذَا الرَّسُولِ يَاْكُلُ الطَّعَامَ وَيَمْشِي
فِي الْاَسْوَاقِ لَوْلَا اُنْزِلَ اِلَيْهِ مَلَكٌ فَيَكُونَ مَعَهُ نَذِيرًا ﴿٧﴾
اَوْ يُلْقٰى اِلَيْهِ كَنْزٌ اَوْ تَكُونُ لَهُ جَنَّةٌ يَاْكُلُ مِنْهَا
وَقَالَ الظَّالِمُونَ اِنْ تَتَّبِعُونَ اِلَّا رَجُلًا مَسْحُورًا ﴿٨﴾ اُنْظُرْ
كَيْفَ ضَرَبُوا لَكَ الْاَمْثَالَ فَضَلُّوا فَلَا يَسْتَطِيعُونَ
سَبِيلًا ﴿٩﴾ تَبَارَكَ الَّذِي اِنْ شَاءَ جَعَلَ لَكَ خَيْرًا مِنْ ذٰلِكَ
جَنَّاتٍ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ وَيَجْعَلْ لَكَ قُصُورًا ﴿١٠﴾
بَلْ كَذَّبُوا بِالسَّاعَةِ وَاَعْتَدْنَا لِمَنْ كَذَّبَ بِالسَّاعَةِ سَعِيرًا ﴿١١﴾

**3.** (Digel vê) dev jê berdan û ji xwe re hinek îlâhên din girtin ku ewana qet tu tişt nexuliqandine lê ew bixwe hatine xuliqandin û tu feyde û zerara wan nagihîje wan û li ser mirin û jiyan û vejîna ji nû ve jî be xwedî hêz in.

**4.** Kafiran gotin: “Ev (Qur'an), îftîrayeke/dereweke ku wî li hev anîye û (di lihevanîn û rêzkirinê de) komeke din jî alîkarîya wî kiriye.” Birastî wan (bi vê gotina xwe) zilm û derew kirine.

**5.** Gotin: “Ev, çîrokên berê ne. (Bi hinekên din) daye nivîsandin û ew sibeh û êvar (ji alî hinekan ve) jê re tê xwendin.”

**6.** Bibêje: “Ew ê ku bi sira erd û esmanan dizane nazil kiriye. Bêguman ew, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**7.** Gotin: “Ev pêxemberekî çawa ye? (wekî mirovên ji rêzê) xwarin dixwe û di sûk û bazaran de digere! Ma ne hewce bû ku melâîketeke hişyarker jî pê re daketa?”

**8.** “Ma ne hewce bû ku xezîneyek jê re bihata dayîn an jî bexçeyekî wî hebûna da ku jê bixwara?” Zaliman gotin: “Hûn bitenê didin pey zilamekî bi sêhrê ketîye.”

**9.** De binêre ka çawa mîsalan didin te û averê dibin! Êdî qet tu rê (ya ku wan bigihîjîne heqîyê) nabînin.

**10.** (Ji tiştên dixwazin) herî bi xêrtir bexçeyên ku di binê wan de çem diherikin û qesran jî; eger daxwaz bike ew Allah ê ku ji bo te dikare ava bike, çiqas berz û çiqas mubarek e.

**11.** (Nexêr, ne wisan e!) Jixwe wan roja qiyametê jî derewandibûn. Û me ji bo yên roja qiyametê derewandine re agirekî ku alavên bi erjeng direşîne amade kiriye.

اِذَا رَاَتْهُمْ مِنْ مَكَانٍ بَعِيدٍ سَمِعُوا لَهَا تَغَيُّظًا وَزَفِيرًا ﴿١٢﴾
وَاِذَٓا اُلْقُوا مِنْهَا مَكَانًا ضَيِّقًا مُقَرَّنِينَ دَعَوْا
هُنَالِكَ ثُبُورًاۜ ﴿١٣﴾ لَا تَدْعُوا الْيَوْمَ ثُبُورًا وَاحِدًا وَادْعُوا
ثُبُورًا كَثِيرًا ﴿١٤﴾ قُلْ اَذٰلِكَ خَيْرٌ اَمْ جَنَّةُ الْخُلْدِ الَّتِي
وُعِدَ الْمُتَّقُونَۜ كَانَتْ لَهُمْ جَزَٓاءً وَمَصِيرًا ﴿١٥﴾ لَهُمْ فِيهَا
مَا يَشَٓاؤُ۫نَ خَالِدِينَۜ كَانَ عَلٰى رَبِّكَ وَعْدًا مَسْؤُ۫لًا ﴿١٦﴾
وَيَوْمَ يَحْشُرُهُمْ وَمَا يَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ فَيَقُولُ
ءَاَنْتُمْ اَضْلَلْتُمْ عِبَادِي هٰٓؤُ۫لَٓاءِ اَمْ هُمْ ضَلُّوا السَّبِيلَۜ ﴿١٧﴾
قَالُوا سُبْحَانَكَ مَا كَانَ يَنْبَغِي لَنَٓا اَنْ نَتَّخِذَ مِنْ دُونِكَ
مِنْ اَوْلِيَٓاءَ وَلٰكِنْ مَتَّعْتَهُمْ وَاٰبَٓاءَهُمْ حَتّٰى نَسُوا الذِّكْرَۚ
وَكَانُوا قَوْمًا بُورًا ﴿١٨﴾ فَقَدْ كَذَّبُوكُمْ بِمَا تَقُولُونَۙ
فَمَا تَسْتَطِيعُونَ صَرْفًا وَلَا نَصْرًاۚ وَمَنْ يَظْلِمْ مِنْكُمْ نُذِقْهُ
عَذَابًا كَبِيرًا ﴿١٩﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَا قَبْلَكَ مِنَ الْمُرْسَلِينَ
اِلَّٓا اِنَّهُمْ لَيَاْكُلُونَ الطَّعَامَ وَيَمْشُونَ فِي الْاَسْوَاقِۜ وَجَعَلْنَا
بَعْضَكُمْ لِبَعْضٍ فِتْنَةًۜ اَتَصْبِرُونَۚ وَكَانَ رَبُّكَ بَصِيرًاۚ ﴿٢٠﴾

**12.** Dema ku (cehennem) ji dûr ve wan dibîne, hêrs û himûguma wê dibihîzin.

**13.** Dema bi awayekî girêdayî di cihekî teng de têne avêtin li wê derê daxwaza helakê dikin. (Dibêjin: "Hê mirin, hê tunebûn, de were me xelas bike.")

**14.** (Ji wan re wiha tê gotin:) "Îro ne carek tenê helakê bixwazin. (Berevajî) gelek caran daxwaza helakê bikin."

**15.** Bibêje: "Erê ma ev an jî cenneta xuld/cenneta ebedîyetê bi xêrtir e? Lewre ew (cennet) xelat û cihlêvegera wan e."

**16.** Di wan (cennetên) ku tê de ebedî dimînin de çi tiştê dixwazin ji wan re (tê dayîn). Ev weadeke Rabbê te ye ku dihê hêvîkirin/dihê xwestin/hêjayê daxwazê ye.

**17.** Wê roja ku wê wan ên ji xeynî Allah îbadet li wan dikirin (bivejîne û) di hizûra xwe de bicivîne (Allah) dibêje: "Ma we evdên min ji rê derxist an ew bixwe ji rê derketibûn?"

**18.** Wê bibêjin: "Em te tenzîh dikin. Ne mijara axaftinê ye ku em ji te pê ve ji xwe re dostan bigirin. Lê te (bi nîmetên dinyayê) wan û bavûkalên wan îstîfade kirin. Heta wisan ku wan zikirkirina te/îman/Kitêb ji bîr kirin. Û bûne komekî ku helakê heq kirin."

**19.** Bêguman (ew ên we ji xwe re îlâh girtine) gotinên we derewandin. Êdî hûn ne dikarin (ezab) vegerînin û ne jî alîkarî (bixwe) bikin. Ji we her kî zilim bike em ê ezabeke mezin bi wî bitamînin.

**20.** Hemû pêxemberên ku me di berîya te de şandibûn jî xwarin dixwarin û di sûk û bazaran de digerîyan. Me hin ji we ji hinan re kiriye fitne (wesîleya îmtîhanê). Ka hûn ê sebir bikin? Rabbê te (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e.

وَقَالَ الَّذٖينَ لَا يَرْجُونَ لِقَٓاءَنَا لَوْلَٓا اُنْزِلَ عَلَيْنَا الْمَلٰٓئِكَةُ
اَوْ نَرٰى رَبَّنَا لَقَدِ اسْتَكْبَرُوا فٖٓي اَنْفُسِهِمْ وَعَتَوْ عُتُوًّا
كَبٖيرًا ﴿٢١﴾ يَوْمَ يَرَوْنَ الْمَلٰٓئِكَةَ لَا بُشْرٰى يَوْمَئِذٍ
لِلْمُجْرِمٖينَ وَيَقُولُونَ حِجْرًا مَحْجُورًا ﴿٢٢﴾ وَقَدِمْنَٓا اِلٰى مَا عَمِلُوا
مِنْ عَمَلٍ فَجَعَلْنَاهُ هَبَٓاءً مَنْثُورًا ﴿٢٣﴾ اَصْحَابُ الْجَنَّةِ يَوْمَئِذٍ خَيْرٌ
مُسْتَقَرًّا وَاَحْسَنُ مَقٖيلًا ﴿٢٤﴾ وَيَوْمَ تَشَقَّقُ السَّمَٓاءُ بِالْغَمَامِ وَنُزِّلَ
الْمَلٰٓئِكَةُ تَنْزٖيلًا ﴿٢٥﴾ اَلْمُلْكُ يَوْمَئِذٍ الْحَقُّ لِلرَّحْمٰنِ وَكَانَ
يَوْمًا عَلَى الْكَافِرٖينَ عَسٖيرًا ﴿٢٦﴾ وَيَوْمَ يَعَضُّ الظَّالِمُ عَلٰى يَدَيْهِ
يَقُولُ يَا لَيْتَنٖي اتَّخَذْتُ مَعَ الرَّسُولِ سَبٖيلًا ﴿٢٧﴾ يَا وَيْلَتٰى لَيْتَنٖي
لَمْ اَتَّخِذْ فُلَانًا خَلٖيلًا ﴿٢٨﴾ لَقَدْ اَضَلَّنٖي عَنِ الذِّكْرِ بَعْدَ
اِذْ جَٓاءَنٖي وَكَانَ الشَّيْطَانُ لِلْاِنْسَانِ خَذُولًا ﴿٢٩﴾ وَقَالَ الرَّسُولُ
يَا رَبِّ اِنَّ قَوْمِي اتَّخَذُوا هٰذَا الْقُرْاٰنَ مَهْجُورًا ﴿٣٠﴾ وَكَذٰلِكَ
جَعَلْنَا لِكُلِّ نَبِيٍّ عَدُوًّا مِنَ الْمُجْرِمٖينَ وَكَفٰى بِرَبِّكَ
هَادِيًا وَنَصٖيرًا ﴿٣١﴾ وَقَالَ الَّذٖينَ كَفَرُوا لَوْلَا نُزِّلَ عَلَيْهِ الْقُرْاٰنُ
جُمْلَةً وَاحِدَةً كَذٰلِكَ لِنُثَبِّتَ بِهٖ فُؤَادَكَ وَرَتَّلْنَاهُ تَرْتٖيلًا ﴿٣٢﴾




**21.** Ew ên hêvî nedikirin ku wê leqayî me bên wiha gotin: “De bila melâîket di ser me de dakevin an jî me Rabbê xwe bidîta!” Sond be wan (bi pirskirina vê sualê) quretîyê kirin û bi bitirbûneke/bi harîtîyeke mezin ji hedê xwe borîn.

**22.** Roja ku wê melâîketan bibînin ji bo gunehkarên mucrîm/sûcdar mizgînî tune. Û wiha dibêjin: “(Ya ku lihêvîya me ye) mehrûmîyeteke bêkêmasî ye!

**23.** Em berê xwe didin amelên ku kirine û (amelên wan) dikin wekî zerreyên/pirîskên toza ku li ber bayê dikeve/wekî ku qet ne hatîye kirin tu tişt namîne.

**24.** Cihwarê ehlê cennetê wê rojê bixêrtir e û îstîrahetgeha wan herî xweşiktir e.

**25.** Esman bi ewran re wê rojê bibe parçe û melâîket jî di pey hev re bên daxistin.

**26.** Ew roj, hakimîyet/serwerî ya heq aîdê Rahmân e. Û ew, ji bo kafiran rojeke pir zor e.

**27.** Kesê zalim wê rojê destê xwe gez dike û wiha dibêje: “Xwezî min bi pêxember re bi rêyekî bigirta (ez bibûna tabiê wî)!”

**28.** “Xwelî li serê min be! Wey ev çi hate serê min! Xwezî min filankes ji bo xwe dost negirtiba.”

**29.** “Sond be, piştî ku ew zikir/Qur'an ji min re hat, wî ez ji wê averê kirim. Şeytan (pêşî weadan dike û piştre) însanan di nîvê rê de bêalîkarî dihêle.”

**30.** Pêxember dibêje: “Rabbê min! Bêguman qewmê min, ev Qur'an terikandî hiştin.”

(Di roja qiyametê de ew ên ku Rasûlullah (ass) wê gilîya wan bike û ji wan bibe dozdar; ew kes in ku Qur'anê di rewşeke mehcûr/terikandî de hiştine û wêran kirine. Wekî terikandina îman anîn û amel kirina pê û çêkirina qanûn û hukim kirina pê û ji însanan re teblîx kirina wê û cîhada pê û xwendin û fikirandin û lêgerîna hîdayeta pê; terka Qur'anê di hemû qadên ku em li dij Qur'anê mesûl in di nava xwe de dihewîne. Her mirov di nisbeta terk kirina mesûlîyeta xwe ya li dij wê de Qur'anê mehcûr dihêle û wê bibe dozbarê/dozlêkirîyê Rasûlullah (ass).)

**31.** Her wiha me ji her pêxemberî re dijminekî ji gunehkarên mucrîm/sûcdar çêkir. Wek rehber û alîkar Rabbê te bes e.

**32.** Kafiran gotin: “De bila Qur'an bi yekcar li ser wî nazil bibûya!” Me bi vê awayê (beş bi beş) daxist da ku em qelbê te qewî bikin. Û me ew li ser tertîlê/giran giran xwend.

(Ji bo tesîra Qur'anê ya tê xwestin bê nîşandan divê ew beş bi beş û giran giran yanê li ser tertîlê bê xwendin.)

وَلَا يَأْتُونَكَ بِمَثَلٍ اِلَّا جِئْنَاكَ بِالْحَقِّ وَاَحْسَنَ تَفْسِيرًاۜ ﴿٣٣﴾
اَلَّذِينَ يُحْشَرُونَ عَلٰى وُجُوهِهِمْ اِلٰى جَهَنَّمَۙ اُو۬لٰٓئِكَ شَرٌّ
مَكَانًا وَاَضَلُّ سَبِيلًاۚ ﴿٣٤﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ
وَجَعَلْنَا مَعَهُٓ اَخَاهُ هٰرُونَ وَزِيرًاۚ ﴿٣٥﴾ فَقُلْنَا اذْهَبَٓا اِلَى الْقَوْمِ
الَّذِينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَاۜ فَدَمَّرْنَاهُمْ تَدْمِيرًاۜ ﴿٣٦﴾ وَقَوْمَ نُوحٍ
لَمَّا كَذَّبُوا الرُّسُلَ اَغْرَقْنَاهُمْ وَجَعَلْنَاهُمْ لِلنَّاسِ اٰيَةًۜ
وَاَعْتَدْنَا لِلظَّالِمِينَ عَذَابًا اَلِيمًاۚ ﴿٣٧﴾ وَعَادًا وَثَمُودَا۬ وَاَصْحَابَ
الرَّسِّ وَقُرُونًا بَيْنَ ذٰلِكَ كَثِيرًا ﴿٣٨﴾ وَكُلًّا ضَرَبْنَا
لَهُ الْاَمْثَالَۘ وَكُلًّا تَبَّرْنَا تَتْبِيرًا ﴿٣٩﴾ وَلَقَدْ اَتَوْا عَلَى الْقَرْيَةِ الَّتٖٓي
اُمْطِرَتْ مَطَرَ السَّوْءِۜ اَفَلَمْ يَكُونُوا يَرَوْنَهَاۚ بَلْ كَانُوا
لَا يَرْجُونَ نُشُورًا ﴿٤٠﴾ وَاِذَا رَاَوْكَ اِنْ يَتَّخِذُونَكَ
اِلَّا هُزُوًاۜ اَهٰذَا الَّذٖي بَعَثَ اللّٰهُ رَسُولًا ﴿٤١﴾ اِنْ كَادَ لَيُضِلُّنَا
عَنْ اٰلِهَتِنَا لَوْلَٓا اَنْ صَبَرْنَا عَلَيْهَاۜ وَسَوْفَ يَعْلَمُونَ
حٖينَ يَرَوْنَ الْعَذَابَ مَنْ اَضَلُّ سَبِيلًا ﴿٤٢﴾ اَرَاَيْتَ
مَنِ اتَّخَذَ اِلٰهَهُ هَوٰيهُۜ اَفَاَنْتَ تَكُونُ عَلَيْهِ وَكٖيلًاۙ ﴿٤٣﴾

**33.** Ewana çi dema (ji bo ku delîlan pûç bikin bi te re bikevin nîqaşê û) ji te re mîsalek anîbin, me jî (wek bersiv) ji te re heqîyê û beyaneke herî xweşiktir anîye.

**34.** Ew ên ku bi deverû/serdevkî ber bi cehennemê ve têne ajotin/civandin. Evana ew in ku yên cihwarê wan herî xerab û rêya wan jî herî averêtir in.

**35.** Sond be, me Kitêb da Mûsa û birayê wî Hârûn jî jê re kiribû alîkar.

**36.** Me got: "Herin cem wî qewmê ku ayetên me derewandine." Axir me ew (qewm) serûbin kir.

**37.** Dema ku qewmê Nûh pêxemberên xwe derewandin, me wan (di tofanê de) xeniqand û me wan ji bo însanan kir ayetek (da ku jê îbret bigirin). Me ji bo zaliman ezabekî biêş û jan amade kiriye.

**38.** Me Âd û Semûd û ehlê Ress û gelek qewmên di navbera wan de (jîyîne) jî (helak kir).

**39.** Me ji her yekî ji wan re mîsal (ên ku pê şîret bigirin û beralîyê heqîyê bibin) daye. (Dema di înkarê de serhişkî kirin) me (bi ezabê) qela hemûyan anî.

**40.** Sond be, ew hatibûn şarekî ku bi barana xerabîyê/helakê ketibûn. Erê ma wan wê derê nedidîtin? (Nexêr, ne wisan e! Helbet didîtin!) Lê belê wan vejîna ji nû ve hêvî nedikirin.

**41.** Çi wextê ku te dibînin, tinazên xwe bi te dikin (û dibêjin): "Mûsa ew ê ku Allah bi pêxembertî ji me re şandîye ev e?"

**42.** (Û wiha dibêjin û dipesinin:) "Eger em li ser wan nelerizîbûna û di dor wan de kêlûn nebûna, hindik mabû ku wî me ji îlâhên me averê bikira." Dema ku ezabê dibînin wê fêm bikin/wê bizanibin ka rêya kî hê xerifîtir e.

**43.** Ma te ew kesê ku hewayê xwe/hewesa xwe ji xwe re kiriye îlâh dît? Erê ma vêga tu yê jê re bibî wekîl?

اَمْ تَحْسَبُ اَنَّ اَكْثَرَهُمْ يَسْمَعُونَ اَوْ يَعْقِلُونَۜ اِنْ هُمْ
اِلَّا كَالْاَنْعَامِ بَلْ هُمْ اَضَلُّ سَبِيلًا ﴿٤٤﴾ اَلَمْ تَرَ اِلٰى رَبِّكَ كَيْفَ
مَدَّ الظِّلَّۚ وَلَوْ شَٓاءَ لَجَعَلَهُ سَاكِنًاۚ ثُمَّ جَعَلْنَا الشَّمْسَ عَلَيْهِ
دَلِيلًاۙ ﴿٤٥﴾ ثُمَّ قَبَضْنَاهُ اِلَيْنَا قَبْضًا يَسِيرًا ﴿٤٦﴾ وَهُوَ الَّذ۪ي جَعَلَ
لَكُمُ الَّيْلَ لِبَاسًا وَالنَّوْمَ سُبَاتًا وَجَعَلَ النَّهَارَ نُشُورًا ﴿٤٧﴾
وَهُوَ الَّذ۪ٓي اَرْسَلَ الرِّيَاحَ بُشْرًا بَيْنَ يَدَيْ رَحْمَتِهۚ وَاَنْزَلْنَا
مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً طَهُورًاۙ ﴿٤٨﴾ لِنُحْيِيَ بِه۪ بَلْدَةً مَيْتًا وَنُسْقِيَهُ
مِمَّا خَلَقْنَٓا اَنْعَامًا وَاَنَاسِيَّ كَث۪يرًا ﴿٤٩﴾ وَلَقَدْ صَرَّفْنَاهُ بَيْنَهُمْ
لِيَذَّكَّرُواۘ فَاَبٰٓى اَكْثَرُ النَّاسِ اِلَّا كُفُورًا ﴿٥٠﴾ وَلَوْ شِئْنَا
لَبَعَثْنَا ف۪ي كُلِّ قَرْيَةٍ نَذ۪يرًاۘ ﴿٥١﴾ فَلَا تُطِعِ الْكَافِر۪ينَ وَجَاهِدْهُمْ
بِه۪ جِهَادًا كَب۪يرًا ﴿٥٢﴾ وَهُوَ الَّذ۪ي مَرَجَ الْبَحْرَيْنِ هٰذَا عَذْبٌ
فُرَاتٌ وَهٰذَا مِلْحٌ اُجَاجٌۚ وَجَعَلَ بَيْنَهُمَا بَرْزَخًا وَحِجْرًا
مَحْجُورًا ﴿٥٣﴾ وَهُوَ الَّذ۪ي خَلَقَ مِنَ الْمَٓاءِ بَشَرًا فَجَعَلَهُ
نَسَبًا وَصِهْرًاۜ وَكَانَ رَبُّكَ قَد۪يرًا ﴿٥٤﴾ وَيَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
مَا لَا يَنْفَعُهُمْ وَلَا يَضُرُّهُمْۜ وَكَانَ الْكَافِرُ عَلٰى رَبِّه۪ ظَه۪يرًا ﴿٥٥﴾

**44.** Tu zen dikî ku pirên wan gûh didin/seh dikin û aqil digirin? Ew, bes mîna heywanan in. Nexêr, ew ji wan jî rêşaştir in.

**45.** Ma tu nabînî ku Rabbê te sî çawa dirêj kiriye? Eger bixwesta dikaribû ew nelebitî bihêle. Paşê me roj jê re kire delîl.

**46.** Paşê me ew (sî) hêdî hêdî bi bal xwe ve kişand.

**47.** Ew e yê ku şev ji bo we kiriye libas û xew kiriye îstîrehat û roj (ji bo hûn li rizqên xwe bigerin) kiriye (dema) destpêkê û belavbûnê.

**48.** Ew ê ku di pêşîya rahmeta xwe/baranê de wek mizgînî bayê dişîne ew e. Me ji asîman aveke tahir/pakîpaqij daxist.

**49.** (Me baran daxist da ku) bi wê şarekî hişkemirî bivejînin û heywan û însanên ku me xuliqandine pê av bidin.

**50.** Sond be (wê baranê) me di navbera wan de li hev vegerand û belav kir da ku şîret bigirin. Lê pirên însanan (şûna fêm bikin an îman bînin) di kufrê de serhişkî kirin.

**51.** Eger me bixwesta, me yê ji her bajarî re hişyarkerekî bişanda. (Lê belê, me tu ji hemû însanîyetê re şandîye.)

**52.** Îtaeta kafiran neke! Û bi wê (Qur'anê) li dij wan cîhadeke mezin bike.

(Bi rehber girtina Qur'anê û bi teblîxa wê, li gorî rêbaza têkoşîna pêşengên hîdayetê mucadeleya bi kafiran re, cîhad bixwe ye. Heta ku ne cîhad tenê ye, cîhada mezin e.)

**53.** Ew ê ku her du behran (beyî ku tevlîhev bibin diherikîne) ew e. Ev a ha şêrîneke şêrîn e û ev jî şor û tehl e. Wî asteng û tixûbeke xwiya xistîye navbera her duyan.

**54.** Ew ê ku ji avê însan xuliqandîye û ew kiriye xwedî neseb/nîjad û bi sixrîyetê/bi rêya nîkahê (pêwendîya eqrebatîyê) pêk anîye ew e. Rabbê te (yê ku hêza wî digihîje her tiştî û xwedî qudreta mutleq) Qadîr e.

**55.** Dev ji Allah berdidin û perestîya hin tiştên din dikin ku ne zerar û ne jî feydeya wan heye. Kafir ew e ku (dide pey şeytan û li cem wî sef digire û) li dijî Rabbê xwe derdikeve.

وَمَٓا اَرْسَلْنَاكَ اِلَّا مُبَشِّرًا وَنَذ۪يرًا ﴿٥٦﴾ قُلْ مَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ
مِنْ اَجْرٍ اِلَّا مَنْ شَٓاءَ اَنْ يَتَّخِذَ اِلٰى رَبِّه۪ سَب۪يلًا ﴿٥٧﴾ وَتَوَكَّلْ
عَلَى الْحَيِّ الَّذ۪ي لَا يَمُوتُ وَسَبِّحْ بِحَمْدِه۪ۜ وَكَفٰى
بِه۪ بِذُنُوبِ عِبَادِه۪ خَب۪يرًاۚۛ ﴿٥٨﴾ اَلَّذ۪ي خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ
وَمَا بَيْنَهُمَا ف۪ي سِتَّةِ اَيَّامٍ ثُمَّ اسْتَوٰى عَلَى الْعَرْشِۚ اَلرَّحْمٰنُ
فَسْـَٔلْ بِه۪ خَب۪يرًا ﴿٥٩﴾ وَاِذَا ق۪يلَ لَهُمُ اسْجُدُوا لِلرَّحْمٰنِ قَالُوا
وَمَا الرَّحْمٰنُۗ اَنَسْجُدُ لِمَا تَأْمُرُنَا وَزَادَهُمْ نُفُورًا ﴿٦٠﴾ تَبَارَكَ
الَّذ۪ي جَعَلَ فِي السَّمَٓاءِ بُرُوجًا وَجَعَلَ ف۪يهَا سِرَاجًا وَقَمَرًا
مُن۪يرًا ﴿٦١﴾ وَهُوَ الَّذ۪ي جَعَلَ الَّيْلَ وَالنَّهَارَ خِلْفَةً لِمَنْ اَرَادَ
اَنْ يَذَّكَّرَ اَوْ اَرَادَ شُكُورًا ﴿٦٢﴾ وَعِبَادُ الرَّحْمٰنِ الَّذ۪ينَ
يَمْشُونَ عَلَى الْاَرْضِ هَوْنًا وَاِذَا خَاطَبَهُمُ الْجَاهِلُونَ قَالُوا
سَلَامًا ﴿٦٣﴾ وَالَّذ۪ينَ يَب۪يتُونَ لِرَبِّهِمْ سُجَّدًا وَقِيَامًا ﴿٦٤﴾ وَالَّذ۪ينَ
يَقُولُونَ رَبَّنَا اصْرِفْ عَنَّا عَذَابَ جَهَنَّمَۗ اِنَّ عَذَابَهَا كَانَ
غَرَامًاۗ ﴿٦٥﴾ اِنَّهَا سَٓاءَتْ مُسْتَقَرًّا وَمُقَامًا ﴿٦٦﴾ وَالَّذ۪ينَ اِذَٓا اَنْفَقُوا
لَمْ يُسْرِفُوا وَلَمْ يَقْتُرُوا وَكَانَ بَيْنَ ذٰلِكَ قَوَامًا ﴿٦٧﴾

**56.** Me tu wek mizgînvan û hişyarker şandîye.

**57.** Bibêje: “Ez ji we (di muqabilê vê dawetê de) qet tu heqekî naxwazim. Daxwaza min ev e; (kesên ku li rizaya wî digerin û) ber bi Rabbê xwe ve bi rêyekî bigirin (bi dest bixim).

**58.** Xwe bispêre wî yê Hayy (Allah) ê ku qet mirin jê re tuneye! Wî bi hemd/bi sena tesbîh bike. Ji agahdarîya gunehên evdê xwe re ew bes e.

**59.** Ew (Allah) ê ku erd û asîman û tiştên di navbera wan de hene di şeş rojan xuliqandîye û paşê îstîwayê erşê kiriye. (Ew,) Rahmân e. Wî ji yekî zane bipirse.

(Der heqê nav û sifetên Allah (ac) bnr. 3/Âl-î Îmran, 181; 7/A’raf, 180; 57/ Hadîd, 4)




**60.** Dema ji wan re tê gotin: “Ji Rahmân re secde bikin.” wiha dibêjin: “Rahmân jî çî ye?” “Ma ji wî yê ku tu ji me re emir dikî re em ê secde bikin?” (Ev emir,) dûr ketin û reva wan zêdetir kir.

**61.** Ew (Allah) ê ku li esmanan bircan xuliqandîye û tê de qendîlek û hîveke ronak danîye çiqas berz û çiqas mubarek e.

**62.** Ew ê ji yê ku bixwaze şîret bigire an jî şikur bike re, şev û roj di pey hev re tîne ew e.

**63.** Îbadên Rahmân li ser rûyê erdê bi tewazû dimeşin/digerin. Dema kesên nezan/cahil dev davêjin wan wiha dibêjin: “Silav li we!”

**64.** Ew in ku şevên xwe ji Rabbê xwe re di secdê de û di qiyamê de diborînin.

**65.** Ew wiha dibêjin: “Rabbê me! Ezabê cehennemê ji ser me bide alî. Bêşik ezabê wê bêdawîye û ragirtina/tehemûla wê zor e.”

**66.** “Bêguman ew çi wargeheke kirêt û qonaxeke xerab e.”

**67.** Ew dema ku xerc dikin ne îsraf/destbelavî û ne jî timayî/qesîsî dikin.

وَالَّذِينَ لَا يَدْعُونَ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ وَلَا يَقْتُلُونَ النَّفْسَ
الَّتٖى حَرَّمَ اللّٰهُ اِلَّا بِالْحَقِّ وَلَا يَزْنُونَۚ وَمَنْ يَفْعَلْ ذٰلِكَ يَلْقَ
اَثَامًاۙ ﴿٦٨﴾ يُضَاعَفْ لَهُ الْعَذَابُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ وَيَخْلُدْ فٖيهٖ مُهَانًاۗ ﴿٦٩﴾
اِلَّا مَنْ تَابَ وَاٰمَنَ وَعَمِلَ عَمَلًا صَالِحًا فَاُو۬لٰٓئِكَ يُبَدِّلُ اللّٰهُ
سَيِّـَٔاتِهِمْ حَسَنَاتٍۜ وَكَانَ اللّٰهُ غَفُورًا رَحٖيمًا ﴿٧٠﴾ وَمَنْ تَابَ
وَعَمِلَ صَالِحًا فَاِنَّهُ يَتُوبُ اِلَى اللّٰهِ مَتَابًا ﴿٧١﴾ وَالَّذٖينَ
لَا يَشْهَدُونَ الزُّورَۙ وَاِذَا مَرُّوا بِاللَّغْوِ مَرُّوا كِرَامًا ﴿٧٢﴾ وَالَّذٖينَ
اِذَا ذُكِّرُوا بِاٰيَاتِ رَبِّهِمْ لَمْ يَخِرُّوا عَلَيْهَا صُمًّا وَعُمْيَانًا ﴿٧٣﴾
وَالَّذٖينَ يَقُولُونَ رَبَّنَا هَبْ لَنَا مِنْ اَزْوَاجِنَا وَذُرِّيَّاتِنَا قُرَّةَ
اَعْيُنٍ وَاجْعَلْنَا لِلْمُتَّقٖينَ اِمَامًا ﴿٧٤﴾ اُو۬لٰٓئِكَ يُجْزَوْنَ الْغُرْفَةَ
بِمَا صَبَرُوا وَيُلَقَّوْنَ فٖيهَا تَحِيَّةً وَسَلَامًاۙ ﴿٧٥﴾ خَالِدٖينَ فٖيهَاۜ
حَسُنَتْ مُسْتَقَرًّا وَمُقَامًا ﴿٧٦﴾ قُلْ مَا يَعْبَؤُا بِكُمْ رَبّٖى
لَوْلَا دُعَٓاؤُ۬كُمْۚ فَقَدْ كَذَّبْتُمْ فَسَوْفَ يَكُونُ لِزَامًا ﴿٧٧﴾

سُورَةُ الشُّعَرَٓاءِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ مِائَتَانِ وَسَبْعٌ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

**68.** Ew, ligel Allah ji îlâhekî din re dûa nakin û (weke qisasê, sebebekî şer'î ne têde) bi neheqî canê ku Allah heram kiriye nakujin û zinayê jî nakin. Her kî jî evana bike wê rûbirûyê cezayekî bibe.

**69.** Roja qiyametê wê ezabê wî qat bi qat zêdetir bibe û (di nava ezabê de) bi rewşeke kêmxistî wê bêdawî bimîne.

**70.** (Lê) ew ên tobe kirine û îman anîne û amelên salih kirine ne têde ne. Allah, gunehên wan bi xêran diguherîne (an jî şirka wan bi îmanê û mêrkujîya wan bi islahê û zinayê wan jî bi îffetê diguherîne). Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**71.** Kî jî tobe bike û amelên salih bike bêguman ew ê bi tobeyeke meqbûl bi bal Allah ve vegere.

**72.** Ew, li ser derewan şahidîyê nakin. Dema tiştekî betal/bêkêr/batil dibînin, helwesta însanên hêja/birûmet radixin û jê rû vedigerînin û diçin.

**73.** Dema ku ayetên Rabbê wan tînin bîra wan, ew ne wekî kesên kor û ker tevdigerin. (Gûh didin ser û dikin ku fêm bikin.)

**74.** Ew wiha dibêjin: "Rabbê me! Ji jin û zarokên me ên ku ji bo me bibin çavkanîya şahîyê/çavronahîyê û aramîyê bide me. Û me ji Mutteqîyan re bike pêşeng/îmam."

**75.** Evana di muqabilê sebra xwe bi xurfeyên/odeyên (di cennetê de ji bo mêvanên taybet amadebûyî ne) tên xelatkirin. Û li wê derê bi silavdanê û bi peşnîyazîyên xweşîyê tên pêşwazîkirin.

**76.** Wê di wir de bêdawî bimînin. Ew der çi wargeheke rind û qonaxeke xweş e."

**77.** Bibêje: "Eger dûayê we nebûna ka li îndallah/li cem Allah wê çi qedrê we hebûna? Lê we derewand. (Di berdêla derewandina we de wê ezab ji bo we) bibe çarenîn/jênerev."

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
طٰسٓمٓ ﴿١﴾ تِلْكَ اٰيَاتُ الْكِتَابِ الْمُب۪ينِ ﴿٢﴾ لَعَلَّكَ بَاخِعٌ نَفْسَكَ
اَلَّا يَكُونُوا مُؤْمِن۪ينَ ﴿٣﴾ اِنْ نَشَاْ نُنَزِّلْ عَلَيْهِمْ مِنَ السَّمَٓاءِ
اٰيَةً فَظَلَّتْ اَعْنَاقُهُمْ لَهَا خَاضِع۪ينَ ﴿٤﴾ وَمَا يَأْت۪يهِمْ مِنْ ذِكْرٍ
مِنَ الرَّحْمٰنِ مُحْدَثٍ اِلَّا كَانُوا عَنْهُ مُعْرِض۪ينَ ﴿٥﴾ فَقَدْ كَذَّبُوا
فَسَيَأْت۪يهِمْ اَنْبٰٓؤُا مَا كَانُوا بِه۪ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٦﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا اِلَى الْاَرْضِ
كَمْ اَنْبَتْنَا ف۪يهَا مِنْ كُلِّ زَوْجٍ كَر۪يمٍ ﴿٧﴾ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَةً وَمَا كَانَ
اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِن۪ينَ ﴿٨﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَز۪يزُ الرَّح۪يمُ ﴿٩﴾ وَاِذْ
نَادٰى رَبُّكَ مُوسٰٓى اَنِ ائْتِ الْقَوْمَ الظَّالِم۪ينَ ﴿١٠﴾ قَوْمَ فِرْعَوْنَ
اَلَا يَتَّقُونَ ﴿١١﴾ قَالَ رَبِّ اِنّ۪ٓي اَخَافُ اَنْ يُكَذِّبُونِ ﴿١٢﴾ وَيَض۪يقُ صَدْر۪ي
وَلَا يَنْطَلِقُ لِسَان۪ي فَاَرْسِلْ اِلٰى هٰرُونَ ﴿١٣﴾ وَلَهُمْ عَلَيَّ ذَنْبٌ فَاَخَافُ
اَنْ يَقْتُلُونِ ﴿١٤﴾ قَالَ كَلَّا فَاذْهَبَا بِاٰيَاتِنَٓا اِنَّا مَعَكُمْ مُسْتَمِعُونَ ﴿١٥﴾
فَأْتِيَا فِرْعَوْنَ فَقُولَٓا اِنَّا رَسُولُ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿١٦﴾ اَنْ اَرْسِلْ مَعَنَا
بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَ ﴿١٧﴾ قَالَ اَلَمْ نُرَبِّكَ ف۪ينَا وَل۪يدًا وَلَبِثْتَ ف۪ينَا مِنْ عُمُرِكَ
سِن۪ينَ ﴿١٨﴾ وَفَعَلْتَ فَعْلَتَكَ الَّت۪ي فَعَلْتَ وَاَنْتَ مِنَ الْكَافِر۪ينَ ﴿١٩﴾

## 26. SÛREYA ŞÛARÂ

*(Sûreya Şûarâ, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û du sed û bîst û heft (227) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya bîst û şeşemîn e. Piştî sûreya Baqara ji hêla piranîya ayetan ve di Qur'anê de sûreya herî dirêj tê pejirandin. Sûre, navê xwe ji peyva "Şûarâ" ya ku di ayeta 224. de dibore û tê ser maneya şairan, sitendîye. Sûre têkoşîna Mûsa û Harûn (as) ya li dij Firewn û qiseyên Îbrahîm û Nûh û Hûd û Salih û Lût û Şûayb (asm) vedibêje. Îdîaya muşrîkan ya ku dibêjin Qur'an ji çavkanîyeke derê wehîyê ye, ligel pûç û betalkirina van îdîayan bi eşkerehî diyar dike ku Qur'an berhema wehîyê ye û qet tu bandora tiştekî din li ser wê tune. Ligel vê behsa xerabî û derewkarîya şairan dike.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.).*

**1.** Ta, Sîn, Mîm.
**2.** Ev, ayetên Kitêba vikîvekirî/raveker in.
**3.** Ji ber ku ew îman naynin hindik maye ku (ji diltengîyê) tu xwe helak bikî.
**4.** Eger em bixwazin, em ê ji esman ayetek/mucîzeyek daxînin ku ew



ê li dij wê sitûxwar bimînin. (Wê mecbûr bimînin ku îman bînin û teslîm bibin.)
**5.** Her çi carî ji wan re ji Rahmân ayetek/bibîrxistinek nû hatibe, rû jê vedigerînin.
**6.** Muheqeq wan (vê zikrê/bibîrxistinê jî) derewandin. Wê di pêş de agahîya ew tiştê ku tinazê xwe pê dikirin wê ji wan re were.
**7.** Ma ew li ser rûyê erdê nanêrin? Li wê derê ji her cotên nebatên xweşik me hêşîn kirine.
**8.** Bêguman di vê de ayetek heye (ku delaleta qudret û ezameta Allah dike). (Lê) pirên wan ne mumîn in (van ayetan nabînin/fêm nakin).
**9.** Ew Rabbê te bêguman (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.
**10.** Bi bîr bîne ku Rabbê te gazî Mûsa kiribû: "Here cem qewmê zilimkar."
**11.** "Qewmê Firewn... (Ji wan bipirse: Gelo ew ji şirîk çêkirina Allah û ji masîyetê) natirsin û xwe naparêzin?"
**12.** Gotibû: "Rabbê min! Bêguman ez ditirsim ku min biderewînin."
**13.** "Dilê min teng dibe û zimanê min nagere. Wezîfeya rîsaletê (bi min re) bide Hârûn jî."
**14.** "Sûcekî min jî heye, (dibe ku) ew (derxînin pêşîya min û) ditirsim ku min bikujin."
**15.** Got: "Qet/Tu car! Bi ayetên min herin, em bi we re ne û em dibihîzin!"
**16.** "Herin cem Firewn û bibêjin: "Bêşik em qasidên Rabbê aleman (Allah) in."
**17.** "Benî Îsraîl bi me re bişîne."
**18.** (Firewn) got: "Dema tu zarok bûyî ma ne me tu gihandî? Te pirên salên xwe di navbera me de neborand?"
(Karaktera Firewnan ya hevpar yek jî ev e, rizqê ku Allah (ac) daye dikin qar û didin ser çavê însanan. Ji wan muwehhîdên ku berê xwe didin Allah (ac) û otorîte û îdîaya rububîyeta Firewnan red dikin re jî wiha dibêjin: "Ma ne me hûn perwerde kirin? Kar û nanê we ne em didin?" û bi van gotinên xwe ehlê tewhîdê bi nankorî sûcdar dikin. Lê ya rast nankorîya herî mezin wan kiriye, lewre digel Allah (ac) di milkê Allah (ac) de radibin îdîaya serwerîyê dikin.)
**19.** "Û te ew (kar) jî kiribû (mirovekî ji me kuştibû). Tu ji nankoran î."

قَالَ فَعَلْتُهَٓا اِذًا وَاَنَا مِنَ الضَّٓالّ۪ينَۜ ﴿٢٠﴾ فَفَرَرْتُ مِنْكُمْ لَمَّا خِفْتُكُمْ
فَوَهَبَ ل۪ي رَبّ۪ي حُكْمًا وَجَعَلَن۪ي مِنَ الْمُرْسَل۪ينَ ﴿٢١﴾ وَتِلْكَ نِعْمَةٌ
تَمُنُّهَا عَلَيَّ اَنْ عَبَّدْتَ بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَۜ ﴿٢٢﴾ قَالَ فِرْعَوْنُ وَمَا رَبُّ
الْعَالَم۪ينَ ﴿٢٣﴾ قَالَ رَبُّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَاۜ اِنْ كُنْتُمْ
مُوقِن۪ينَ ﴿٢٤﴾ قَالَ لِمَنْ حَوْلَهُٓ اَلَا تَسْتَمِعُونَ ﴿٢٥﴾ قَالَ رَبُّكُمْ
وَرَبُّ اٰبَٓائِكُمُ الْاَوَّل۪ينَ ﴿٢٦﴾ قَالَ اِنَّ رَسُولَكُمُ الَّذ۪ٓي اُرْسِلَ
اِلَيْكُمْ لَمَجْنُونٌ ﴿٢٧﴾ قَالَ رَبُّ الْمَشْرِقِ وَالْمَغْرِبِ وَمَا بَيْنَهُمَاۜ
اِنْ كُنْتُمْ تَعْقِلُونَ ﴿٢٨﴾ قَالَ لَئِنِ اتَّخَذْتَ اِلٰهًا غَيْر۪ي لَاَجْعَلَنَّكَ
مِنَ الْمَسْجُون۪ينَ ﴿٢٩﴾ قَالَ اَوَلَوْ جِئْتُكَ بِشَيْءٍ مُب۪ينٍ ﴿٣٠﴾ قَالَ فَاْتِ بِه۪ٓ
اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِق۪ينَ ﴿٣١﴾ فَاَلْقٰى عَصَاهُ فَاِذَا هِيَ ثُعْبَانٌ مُب۪ينٌۚ ﴿٣٢﴾
وَنَزَعَ يَدَهُ فَاِذَا هِيَ بَيْضَٓاءُ لِلنَّاظِر۪ينَۚ ﴿٣٣﴾ قَالَ لِلْمَلَاِ حَوْلَهُٓ اِنَّ هٰذَا
لَسَاحِرٌ عَل۪يمٌۙ ﴿٣٤﴾ يُر۪يدُ اَنْ يُخْرِجَكُمْ مِنْ اَرْضِكُمْ بِسِحْرِه۪ۗ
فَمَاذَا تَاْمُرُونَ ﴿٣٥﴾ قَالُٓوا اَرْجِهْ وَاَخَاهُ وَابْعَثْ فِي الْمَدَٓائِنِ
حَاشِر۪ينَۙ ﴿٣٦﴾ يَاْتُوكَ بِكُلِّ سَحَّارٍ عَل۪يمٍ ﴿٣٧﴾ فَجُمِعَ السَّحَرَةُ
لِم۪يقَاتِ يَوْمٍ مَعْلُومٍۙ ﴿٣٨﴾ وَق۪يلَ لِلنَّاسِ هَلْ اَنْتُمْ مُجْتَمِعُونَۙ ﴿٣٩﴾

**20.** (Mûsa) got: “Dema ku min ew fiêl kir ez nezan (hê ji Allah wehîy nesitendî) bûm.”
**21.** “Ji ber tirsa we jî ez revîyam. (Piştre) Rabbê min hukim (nubûwet) da min û ez kirim ji wan pêxemberên hatine şandin.”
**22.** “Ew nîmetê ku tu li ser min dikî minnet jî ji ber ku te Benî Îsraîl ji xwe re kiriye kole ye!”
**23.** Firewn got: “Ma Rabbê aleman çi ye?”
**24.** Got: “Rabbê erd û esmanan û yên di navbera wan de ye. Eger hûn bi yeqînî pêbawer bin (wisan e).
**25.** (Firewn) ji wan ên hawîrdora xwe re got: “Ma hûn nabihîzin?”
**26.** (Mûsa) got: “Ew Rabbê we û bavûkalên berîya we ye jî.”
**27.** (Firewn) got: “Teqez ev pêxemberê ji we re hatîye şandin dîn e.”
**28.** (Mûsa) got: “Eger hûn aqil bigirin ew, Rabbê rojhilat û rojava û tiştên di navbera her duyan de ye.”

(Firewn ji bo Mûsa (as) biqehrîne û mijar belav bike çi ji destê wî dihat kiriye. Pirsa (Allah kî ye?) kiriye û wan ên li derdora xwe li dij wî kişkişandîye. Ji Mûsa (as) qotîye ‘dîn!’. Lê Mûsa (as) digel fîtên wî bersiv nedaye û hinarîya esil bi hevokên ji hev cuda dubare kiriye. Bi vê qiseyê helwesta li dij wan kesên ku dixwazin peşk li daweta tewhîdê bixin hatîye hînkirin. Bi guhnedana berizandin û heqaretan û bi bersivnedana pirsên ne di rê de, hinarîya esil bi hevokên cuda bê dubarekirin wê hîleyên kesên rêwîşt Firewn jî pûç û betal bibin. (Ji bo rêbazekî mînahev bnr. 20/Taha, 51-52)

**29.** (Firewn) got: “Eger tu ji xeynî min îlâhekî din ji xwe re bigirî, bêşik ez ê te bavêjim zîndanê.”
**30.** (Mûsa) got: “Ma eger ku min ji te re tiştekî vikîvekirî anîbe jî?”
**31.** (Firewn) got: “Eger tu ji rastbêjan î ka wî bîne (em binêrin)!”
**32.** (Li ser vê) Mûsa gopalê xwe avêt. (Ji nîşkave dît ku) ew, bûye marekî vikîvekirî.
**33.** Destê xwe (ji paşila xwe) derxist. (Ji nîşkave dît ku) ew jî ji bo temaşevanan (bi qasî ku çavê wan biqemişîne) bû (destekî) sipspî.
**34.** (Firewn) ji bijarteyên/neqaneyên derdora xwe re (got:) “Ev sêhrbazekî zana ye/pispor e.”
**35.** (Got:) “Bi sêhra dike re dixwaze ku we ji welatê we derêxe. Ka hûn çi dibêjin?”
(Bnr. 7/A’raf, 110)
**36.** Gotin: “Wî û birayê wî bide paş. (Wan niha ceza neke!) Civyaran/Komkeran bişîne nav şaran/bajaran.”
**37.** “Bila hemû sêhrbâzên zana/pispor ji te re bînin.”
**38.** Hemû sêhrbaz di demeke roja diyarkirî de li hevdu civîyan.
**39.** Û ji însanan re jî hat gotin: “Ma hûn jî nacivin?”

لَعَلَّنَا نَتَّبِعُ السَّحَرَةَ اِنْ كَانُوا هُمُ الْغَالِبِينَ ﴿٤٠﴾ فَلَمَّا جَٓاءَ السَّحَرَةُ
قَالُوا لِفِرْعَوْنَ اَئِنَّ لَنَا لَاَجْرًا اِنْ كُنَّا نَحْنُ الْغَالِبِينَ ﴿٤١﴾ قَالَ
نَعَمْ وَاِنَّكُمْ اِذًا لَمِنَ الْمُقَرَّبِينَ ﴿٤٢﴾ قَالَ لَهُمْ مُوسٰٓى اَلْقُوا مَٓا اَنْتُمْ
مُلْقُونَ ﴿٤٣﴾ فَاَلْقَوْا حِبَالَهُمْ وَعِصِيَّهُمْ وَقَالُوا بِعِزَّةِ فِرْعَوْنَ اِنَّا لَنَحْنُ
الْغَالِبُونَ ﴿٤٤﴾ فَاَلْقٰى مُوسٰى عَصَاهُ فَاِذَا هِىَ تَلْقَفُ مَا يَأْفِكُونَ ﴿٤٥﴾
فَاُلْقِىَ السَّحَرَةُ سَاجِدِينَ ﴿٤٦﴾ قَالُٓوا اٰمَنَّا بِرَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿٤٧﴾
رَبِّ مُوسٰى وَهٰرُونَ ﴿٤٨﴾ قَالَ اٰمَنْتُمْ لَهُ قَبْلَ اَنْ اٰذَنَ لَكُمْ اِنَّهُ
لَكَبِيرُكُمُ الَّذٖى عَلَّمَكُمُ السِّحْرَ فَلَسَوْفَ تَعْلَمُونَ لَاُقَطِّعَنَّ
اَيْدِيَكُمْ وَاَرْجُلَكُمْ مِنْ خِلَافٍ وَلَاُصَلِّبَنَّكُمْ اَجْمَعٖينَ ﴿٤٩﴾ قَالُوا
لَا ضَيْرَ اِنَّٓا اِلٰى رَبِّنَا مُنْقَلِبُونَ ﴿٥٠﴾ اِنَّا نَطْمَعُ اَنْ يَغْفِرَ لَنَا رَبُّنَا خَطَايَانَٓا
اَنْ كُنَّٓا اَوَّلَ الْمُؤْمِنٖينَ ﴿٥١﴾ وَاَوْحَيْنَٓا اِلٰى مُوسٰٓى اَنْ اَسْرِ بِعِبَادٖٓى
اِنَّكُمْ مُتَّبَعُونَ ﴿٥٢﴾ فَاَرْسَلَ فِرْعَوْنُ فِى الْمَدَٓائِنِ حَاشِرٖينَ ﴿٥٣﴾
اِنَّ هٰٓؤُلَٓاءِ لَشِرْذِمَةٌ قَلٖيلُونَ ﴿٥٤﴾ وَاِنَّهُمْ لَنَا لَغَٓائِظُونَ ﴿٥٥﴾ وَاِنَّا لَجَمٖيعٌ
حَاذِرُونَ ﴿٥٦﴾ فَاَخْرَجْنَاهُمْ مِنْ جَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ﴿٥٧﴾ وَكُنُوزٍ وَمَقَامٍ
كَرٖيمٍ ﴿٥٨﴾ كَذٰلِكَ وَاَوْرَثْنَاهَا بَنٖٓى اِسْرَٓائٖيلَ ﴿٥٩﴾ فَاَتْبَعُوهُمْ مُشْرِقٖينَ ﴿٦٠﴾

**40.** (Gotin:) “Eger sêhrbaz bi ser bikevin em hêvî dikin ku em ê bidin pey wan.”

**41.** Sêhrbaz hatin cem Firewn û gotin: “Eger em (li dij Mûsa) bi ser bikevin êdî wê tu yê xelatekî (têrbaş) bidî me, ne wisan?”

**42.** “Erê, helbet (dema ku hûn bi ser bikevin) hûn ê bibin ji (zilamên berbiçav) yên nêzîkî min.”
(Bnr. 7/A’raf, 114)

**43.** Mûsa ji wan re gotibû: “De bavêjin, ka hûn ê çi bavêjin!”

**44.** Wan jî bênê xwe û gopalên xwe avêtin û gotin: “Sond bi izzeta Firewn be, teqez yê ku bi ser bikeve em in.”

**45.** Mûsa jî gopalê xwe avêt. (Lê çi bibînin!) Tiştên ku wan çêkirîye dadiqurtîne.

**46.** Hemû sêhrbaz çûne secdê.

**47.** Gotin: “Me îman bi Rabbê aleman (bi Allah) anî.”

**48.** “Bi Rabbê Mûsa û Hârûn.”

**49.** (Firewn) got: “Berîya ku min destûr daye we hûn îman pê tînin?” Bêguman ew mezinê we ye ku sêhr hînî we kiriye. Pir nêz de hûn ê bibînin/fêm bikin (Ka ez ê çi bînim serê we). Muheqeq ez ê dest û lingên we çeprastî jê bikim û ez ê we daleqînim.”
(Bnr. 7/A’raf, 123)

**50.** Gotin: “Qet ne muhîm e! Bêşik vegera me ji Rabbê me re ye.”

**51.** “Ji ber ku em mumînên pêşîn in, em hêvîya mexfîreta gunehên xwe ji Rabbê xwe dikin.”

**52.** Me ji Mûsa re wiha wehîy kir: “Bi evdên min re derkeve rê. Hûn ê bên taqibkirin.”

**53.** (Ji bo civandina leşkeran) Firewn, civyaran/komkeran şand bajaran.

**54.** (Wan wiha propaganda dikirin:) “Bêguman evana komeke hindik in/kêmjimar in.”

**55.** “Û bêguman li dij me bi hêrs in.”

**56.** “Lê em (li hember kesên wisan) civakeke hişyar û tedbîrgir in.”

**57.** Me, wan ji bexçeyan û ji kanîyan derxist.

**58.** Ji xezîneyan û qesrên hêja!

**59.** Herwiha me Benî Îsraîl (ji cihê ku me wan derxistî re) kir waris.

**60.** (Firewn û leşkerên xwe) bi serê sibê re bi pey wan ketin.

**61.** Dema her du koman hevdu dîtin, hevalên Mûsa wiha gotin: “Teqez em hatin girtin.”

**62.** (Mûsa) got: “Qet/Tu car! Rabbê min bi min re ye, teqez wê rê nîşanî min bide.”

**63.** Me ji Mûsa re wiha wehîy kiribû: “Gopalê xwe li behrê bixe!” (Gopalê xwe lê xist) û behr şeq bû. Her şeqeke wê weke çiyayekî mezin bû.

**64.** Me ew ên din (Firewn û leşkerên wî) jî nêzîkî wan kirin.

**65.** Me Mûsa û ew ên pê re bûn hemûyan xelas kirin.

**66.** Paşê me ew ên din (di behrê de) xeniqandin.

**67.** Bêguman di vê de (li ser mijara ku wê Allah alîkarîya dostên xwe bike û dijminên xwe jî helak bike) ayetek heye. Jixwe pirên wan ne mumîn in.

**68.** Bêguman Rabbê te (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**69.** Ji wan re xebera Îbrahîm bixwîne.

**70.** Bi bîr bîne! Dema ji bavê xwe re û ji qewmê xwe re wiha gotibû: “Hûn perestîya/îbadeta çi dikin?”

**71.** Gotibûn: “Em perestîya pûtan dikin û vê îbadeta xwe bênavber didomînin.”

**72.** Got: “Ma dema ku hûn lavahî/dûa dikin we dibihîzin?”

**73.** “An jî qet tu feyde û zerara wan digihîje we?”

**74.** (Nexêr, ne wisan e!) Me bavûkalên xwe li ser vê rewşê dît. (Em jî eynî karî bê pirsyarî dikin.)

**75.** Got: “We dît, ka hûn ji çi re îbadetê dikin?”

**76.** “Hûn jî û bavûkalên we yên berîya we jî.”

فَلَمَّا تَرَٓاءَ الْجَمْعَانِ قَالَ اَصْحَابُ مُوسٰٓى اِنَّا لَمُدْرَكُونَ ﴿٦١﴾
قَالَ كَلَّاۚ اِنَّ مَعِيَ رَبّ۪ي سَيَهْد۪ينِ ﴿٦٢﴾ فَاَوْحَيْنَٓا اِلٰى مُوسٰٓى
اَنِ اضْرِبْ بِعَصَاكَ الْبَحْرَ فَانْفَلَقَ فَكَانَ كُلُّ فِرْقٍ كَالطَّوْدِ
الْعَظ۪يمِ ﴿٦٣﴾ وَاَزْلَفْنَا ثَمَّ الْاٰخَر۪ينَ ﴿٦٤﴾ وَاَنْجَيْنَا مُوسٰى وَمَنْ مَعَهُٓ
اَجْمَع۪ينَ ﴿٦٥﴾ ثُمَّ اَغْرَقْنَا الْاٰخَر۪ينَ ﴿٦٦﴾ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَةً وَمَا كَانَ
اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِن۪ينَ ﴿٦٧﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَز۪يزُ الرَّح۪يمُ ﴿٦٨﴾
وَاتْلُ عَلَيْهِمْ نَبَاَ اِبْرٰه۪يمَ ﴿٦٩﴾ اِذْ قَالَ لِاَب۪يهِ وَقَوْمِه۪ مَا تَعْبُدُونَ ﴿٧٠﴾
قَالُوا نَعْبُدُ اَصْنَامًا فَنَظَلُّ لَهَا عَاكِف۪ينَ ﴿٧١﴾ قَالَ
هَلْ يَسْمَعُونَكُمْ اِذْ تَدْعُونَ ﴿٧٢﴾ اَوْ يَنْفَعُونَكُمْ اَوْ يَضُرُّونَ ﴿٧٣﴾
قَالُوا بَلْ وَجَدْنَٓا اٰبَٓاءَنَا كَذٰلِكَ يَفْعَلُونَ ﴿٧٤﴾ قَالَ اَفَرَاَيْتُمْ
مَا كُنْتُمْ تَعْبُدُونَ ﴿٧٥﴾ اَنْتُمْ وَاٰبَٓاؤُكُمُ الْاَقْدَمُونَ ﴿٧٦﴾ فَاِنَّهُمْ
عَدُوٌّ ل۪ٓي اِلَّا رَبَّ الْعَالَم۪ينَ ﴿٧٧﴾ اَلَّذ۪ي خَلَقَن۪ي فَهُوَ يَهْد۪ينِ ﴿٧٨﴾
وَالَّذ۪ي هُوَ يُطْعِمُن۪ي وَيَسْق۪ينِ ﴿٧٩﴾ وَاِذَا مَرِضْتُ فَهُوَ يَشْف۪ينِ ﴿٨٠﴾
وَالَّذ۪ي يُم۪يتُن۪ي ثُمَّ يُحْي۪ينِ ﴿٨١﴾ وَالَّذ۪ٓي اَطْمَعُ اَنْ يَغْفِرَ ل۪ي خَط۪يٓـَٔت۪ي
يَوْمَ الدّ۪ينِ ﴿٨٢﴾ رَبِّ هَبْ ل۪ي حُكْمًا وَاَلْحِقْن۪ي بِالصَّالِح۪ينَ ﴿٨٣﴾

**77.** “Bêşik ew dijminên min in. Lê (Allahê) Rabbê aleman mustesna/ne tê de.”

(Muşrîkan bi vê pêbawer bûn ku ew perestîya Allah (ac) dikin û pûtên wan jî ewana nêzî Allah (ac) dike. Dema ku Îbrahîm (as) got: “Bêşik ew ên ku hûn îbadeta wan dikin, dijminên min in.” ji bo ku muşrîk pirsa “Ma Allah ji (dijminê te ye)?” nekin, wî di vê xalê de Allahê Rabbê aleman îstisna kiriye.)

**78.** “Ew e, yê ku ez xuliqandime û hîdayetê daye min.”

**79.** “Ew e, yê ku min dide xwarin û vexwarin.”

**80.** “Dema ez nexweş dikevim, ew şîfayê dide min.”

**81.** “Ew ê ku min bimirîne û paşê jî bivejîne ew e.”

**82.** “Ew ê ez hêvî dikim ku roja qiyametê wê xetayên min bibexşîne ew e.”

**83.** “Rabbê min! Hikum/hikmet bide min û min tevlî salihan bike.”

وَاجْعَلْ ل۪ي لِسَانَ صِدْقٍ فِي الْاٰخِر۪ينَۙ ﴿٨٤﴾ وَاجْعَلْن۪ي مِنْ وَرَثَةِ جَنَّةِ
النَّع۪يمِۙ ﴿٨٥﴾ وَاغْفِرْ لِاَب۪ٓي اِنَّهُ كَانَ مِنَ الضَّٓالّ۪ينَۙ ﴿٨٦﴾ وَلَا تُخْزِن۪ي
يَوْمَ يُبْعَثُونَۙ ﴿٨٧﴾ يَوْمَ لَا يَنْفَعُ مَالٌ وَلَا بَنُونَۙ ﴿٨٨﴾ اِلَّا مَنْ اَتَى اللّٰهَ
بِقَلْبٍ سَل۪يمٍۜ ﴿٨٩﴾ وَاُزْلِفَتِ الْجَنَّةُ لِلْمُتَّق۪ينَۙ ﴿٩٠﴾ وَبُرِّزَتِ الْجَح۪يمُ
لِلْغَاو۪ينَۙ ﴿٩١﴾ وَق۪يلَ لَهُمْ اَيْنَ مَا كُنْتُمْ تَعْبُدُونَۙ ﴿٩٢﴾ مِنْ دُونِ اللّٰهِۜ هَلْ
يَنْصُرُونَكُمْ اَوْ يَنْتَصِرُونَۜ ﴿٩٣﴾ فَكُبْكِبُوا ف۪يهَا هُمْ وَالْغَاوُنَۙ ﴿٩٤﴾
وَجُنُودُ اِبْل۪يسَ اَجْمَعُونَۜ ﴿٩٥﴾ قَالُوا وَهُمْ ف۪يهَا يَخْتَصِمُونَۙ ﴿٩٦﴾
تَاللّٰهِ اِنْ كُنَّا لَف۪ي ضَلَالٍ مُب۪ينٍۙ ﴿٩٧﴾ اِذْ نُسَوّ۪يكُمْ بِرَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿٩٨﴾
وَمَٓا اَضَلَّنَٓا اِلَّا الْمُجْرِمُونَ ﴿٩٩﴾ فَمَا لَنَا مِنْ شَافِع۪ينَۙ ﴿١٠٠﴾ وَلَا صَد۪يقٍ
حَم۪يمٍ ﴿١٠١﴾ فَلَوْ اَنَّ لَنَا كَرَّةً فَنَكُونَ مِنَ الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿١٠٢﴾ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَةًۜ
وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِن۪ينَ ﴿١٠٣﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَز۪يزُ الرَّح۪يمُ۟ ﴿١٠٤﴾
كَذَّبَتْ قَوْمُ نُوحٍۨ الْمُرْسَل۪ينَۚ ﴿١٠٥﴾ اِذْ قَالَ لَهُمْ اَخُوهُمْ نُوحٌ
اَلَا تَتَّقُونَۚ ﴿١٠٦﴾ اِنّ۪ي لَكُمْ رَسُولٌ اَم۪ينٌۙ ﴿١٠٧﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَط۪يعُونِۚ ﴿١٠٨﴾
وَمَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍۚ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلٰى رَبِّ الْعَالَم۪ينَۚ ﴿١٠٩﴾
فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَط۪يعُونِۜ ﴿١١٠﴾ قَالُٓوا اَنُؤْمِنُ لَكَ وَاتَّبَعَكَ الْاَرْذَلُونَۜ ﴿١١١﴾

**84.** “Tu di navbera neslên ku pey min re tên de ji bo min zara rastîyê çêke. (Bila min li ser xêrê bi bîr bînin.)”
**85.** “Min bike warisê cenneta Naîm.”
**86.** “Bavê min bibexşîne! Bi rastî ew ji rêşaşan e.”
(Bnr. 9/Tewbe, 113-114)
**87.** “Di roja vejîn (a însanan) de min riswa neke û kêm nexe!”
**88.** Ew rojeke (wisan e) ku ne mal û ne jî ewlat feyde dide.
**89.** Lê ew ên bi qelbeke pak/selîm tên, ne tê de.
(Ew qelbên ji nexweşînên weke şirkê û israra li ser gunehên kebaîr û gumanbarîya li dij weadên Allah (ac) dûr bin, ha ewana qelbên selîm/pak in.)
**90.** Cennet, ji Mutteqîyan re tê nêzîkkirin.
**91.** Cehennem jî (da ku baş bibînin) ji bo yên bitir/hêç pêşçav dibe/tê raxistin.
**92.** Ji wan re tê gotin: “Ew ên we perestîya wan dikirin ka ne?”
**93.** “Ji xeynî Allah… Qey dikarin alîkarîya we bikin? An jî dikarin alîkarîyê li xwe bikin?”
**94.** Ew û yên har bi ser serî ve bi wir ve têne avêtin.
**95.** Hemû artêşên îblîs jî.
**96.** Li wê derê bi hev re nîqaş dikin û dê wiha bibêjin.
**97.** “Qesem bi Allah be, em di xerifîyeke vikîvekirî de bûn.”
**98.** “Lewre me hûn bi Allahê Rabbê aleman re wekhev girtibû (weke ku em hez jê bikin me hez we dikir û weke ku em jê ditirsin em ji we ditirsîyan û weke ku me berê xwe dabû wî me li ber destê we tobe dikir û weke ku me jê hêvî dikir me xwe diavête we û weke ku me stû ji serwerîya wî re ditewand em ji qanûnên we re sitûxwar bûn.)”
**99.** “Ji gunehkarên mucrîm/sûcdar pê ve tu kes em ne xerifandin.”
**100.** “(A niha) kesekî ku li me şefaetê bike jî tune.”
**101.** “Û ne jî dostekî dilgerm…”
**102.** “Xwezî vegera me ya bi dinyayê ve mimkûn bibûya û em bibûna ji mumînan.”
**103.** Bêguman di vê de (li ser mijara ku wê Allah alîkarîya dostên xwe bike û dijminên xwe jî helak bike) ayetek heye. Jixwe pirên wan ne mumîn in.



**104.** Rabbê te bêguman (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.
**105.** Qewmê Nûh jî pêxemberên şandî înkar kirin.
**106.** Wê demê birayê wan Nûh ji wan re got: “Hûn (ji Allah) natirsin û xwe naparêzin.”
**107.** “Bêguman ez ji bo we pêxemberekî ewledar/emîn im.”
**108.** Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îtaeta min bikin.
**109.** “(Di muqabilê vê dawet û teblîxa xwe de) ez ji we tu heqekî naxwazim. Heqê min li ser (Allah e ku ew) Rabbê aleman e.
**110.** Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îtaeta min bikin.
**111.** Gotibûn: “Ligel ku kêmketîyên qewmê te dane pey te, em ê çawa îman bi te bînin?”

قَالَ وَمَا عِلْمٖى بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١١٢﴾ اِنْ حِسَابُهُمْ اِلَّا عَلٰى رَبّٖى
لَوْ تَشْعُرُونَ ﴿١١٣﴾ وَمَٓا اَنَا بِطَارِدِ الْمُؤْمِنٖينَ ﴿١١٤﴾ اِنْ اَنَا اِلَّا نَذٖيرٌ مُبٖينٌ ﴿١١٥﴾
قَالُوا لَئِنْ لَمْ تَنْتَهِ يَا نُوحُ لَتَكُونَنَّ مِنَ الْمَرْجُومٖينَ ﴿١١٦﴾
قَالَ رَبِّ اِنَّ قَوْمٖى كَذَّبُونِ ﴿١١٧﴾ فَافْتَحْ بَيْنٖى وَبَيْنَهُمْ فَتْحًا
وَنَجِّنٖى وَمَنْ مَعِىَ مِنَ الْمُؤْمِنٖينَ ﴿١١٨﴾ فَاَنْجَيْنَاهُ وَمَنْ مَعَهُ
فِى الْفُلْكِ الْمَشْحُونِ ﴿١١٩﴾ ثُمَّ اَغْرَقْنَا بَعْدُ الْبَاقٖينَ ﴿١٢٠﴾ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَةً
وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٢١﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَزٖيزُ الرَّحٖيمُ ﴿١٢٢﴾
كَذَّبَتْ عَادٌ اِلْمُرْسَلٖينَ ﴿١٢٣﴾ اِذْ قَالَ لَهُمْ اَخُوهُمْ هُودٌ اَلَا تَتَّقُونَ ﴿١٢٤﴾
اِنّٖى لَكُمْ رَسُولٌ اَمٖينٌ ﴿١٢٥﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطٖيعُونِ ﴿١٢٦﴾ وَمَٓا اَسْـَٔلُكُمْ
عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍ اِنْ اَجْرِىَ اِلَّا عَلٰى رَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿١٢٧﴾ اَتَبْنُونَ بِكُلِّ
رٖيعٍ اٰيَةً تَعْبَثُونَ ﴿١٢٨﴾ وَتَتَّخِذُونَ مَصَانِعَ لَعَلَّكُمْ تَخْلُدُونَ ﴿١٢٩﴾
وَاِذَا بَطَشْتُمْ بَطَشْتُمْ جَبَّارٖينَ ﴿١٣٠﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطٖيعُونِ ﴿١٣١﴾
وَاتَّقُوا الَّذٖٓى اَمَدَّكُمْ بِمَا تَعْلَمُونَ ﴿١٣٢﴾ اَمَدَّكُمْ بِاَنْعَامٍ وَبَنٖينَ ﴿١٣٣﴾
وَجَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ﴿١٣٤﴾ اِنّٖٓى اَخَافُ عَلَيْكُمْ عَذَابَ يَوْمٍ عَظٖيمٍ ﴿١٣٥﴾
قَالُوا سَوَٓاءٌ عَلَيْنَٓا اَوَعَظْتَ اَمْ لَمْ تَكُنْ مِنَ الْوَاعِظٖينَ ﴿١٣٦﴾

**112.** Got: “Der heqê amelên wan de zanîna min tune (ez nikarim wan bidarizînim/mehkeme bikim).”
**113.** “Eger hûn bîrewer in (divê hûn vê bizanibin ku), hisabê wan aîdê Rabbê min e.”
**114.** “Ez ne ew im ku mumînan biqewirînim.”
**115.** “Ez bitenê hişyarkerekî vikîvekirî me.”
**116.** Gotin: “Ya Nûh, eger tu dev ji vê karê xwe bernedî, teqez tu yê bibî ji wan ên ku tên kevirkirin û qewirandin.”
**117.** Got: “Rabbê min! Bêşik qewmê min ez derewandim.”
**118.** “Navbera min û wan (bi hukmê xwe) bifesilîne. Min û mumînên bi min re xelas bike.”
**119.** Me jî ew û yên ligel wî, di keştîyeke tije de xelas kir.
**120.** Paşê me ew ên mayîn xeniqandin.
**121.** Bêguman di vê de (li ser mijara ku wê Allah alîkarîya dostên xwe bike û dijminên xwe jî helak bike) ayetek heye. Jixwe pirên wan ne mumîn in.
**122.** Rabbê te bêguman (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.
**123.** (Qewmê) Ad, pêxemberên şandî înkar kirin.
**124.** Wê demê birayê wan Hûd ji wan re got: “Hûn (ji Allah) natirsin û xwe naparêzin?”
**125.** “Bêguman ez ji bo we pêxemberekî ewledar/emîn im.”
**126.** Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îtaeta min bikin.
**127.** “(Di muqabilê vê dawet û teblîxa xwe de) ez ji we tu heqekî naxwazim. Heqê min li ser (Allah e ku ew) Rabbê aleman e.
**128.** Ma hûn ê li ser her girekî bilind bînayekê ava bikin û hûn kêf û şahî dikin?”
**129.** “Hûn bi hêvîya ku hûn ê di wan de ebedî bimînin avahîyan lê dikin û didomînin?”
**130.** “Dema ku hûn (însanan) digirin, hûn wan bi zordarî digirin?”
**131.** “Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îtaeta min bikin.”
**132.** (Ji Allahê) ku piştgirîya we (bi delalîyên) hûn dizanin kiriye bitirsin û xwe biparêzin.
**133.** “Bi zaroyan û bi heywanan piştgirî da we.”
**134.** “Bi bexçeyan û bi çavkanîyên avê…”
**135.** “Ez, ji bo we ji ezabê rojeke mezin ditirsim.”
**136.** Gotin: “Tu şîretan li me bikî jî û nekî jî ji bo me ferq nake.”

اِنْ هٰذَٓا اِلَّا خُلُقُ الْاَوَّلٖينَۙ ﴿١٣٧﴾ وَمَا نَحْنُ بِمُعَذَّبٖينَۚ ﴿١٣٨﴾ فَكَذَّبُوهُ
فَاَهْلَكْنَاهُمْۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَةًۜ وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٣٩﴾
وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَزٖيزُ الرَّحٖيمُ ﴿١٤٠﴾ كَذَّبَتْ ثَمُودُ الْمُرْسَلٖينَۚ ﴿١٤١﴾
اِذْ قَالَ لَهُمْ اَخُوهُمْ صَالِحٌ اَلَا تَتَّقُونَۚ ﴿١٤٢﴾ اِنّٖي لَكُمْ رَسُولٌ
اَمٖينٌۙ ﴿١٤٣﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطٖيعُونِۚ ﴿١٤٤﴾ وَمَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ
مِنْ اَجْرٍۚ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلٰى رَبِّ الْعَالَمٖينَۜ ﴿١٤٥﴾ اَتُتْرَكُونَ
فٖي مَا هٰهُنَٓا اٰمِنٖينَۙ ﴿١٤٦﴾ فٖي جَنَّاتٍ وَعُيُونٍۙ ﴿١٤٧﴾ وَزُرُوعٍ وَنَخْلٍ طَلْعُهَا
هَضٖيمٌۚ ﴿١٤٨﴾ وَتَنْحِتُونَ مِنَ الْجِبَالِ بُيُوتًا فَارِهٖينَۚ ﴿١٤٩﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ
وَاَطٖيعُونِۚ ﴿١٥٠﴾ وَلَا تُطٖيعُٓوا اَمْرَ الْمُسْرِفٖينَۙ ﴿١٥١﴾ اَلَّذٖينَ يُفْسِدُونَ
فِي الْاَرْضِ وَلَا يُصْلِحُونَ ﴿١٥٢﴾ قَالُٓوا اِنَّمَٓا اَنْتَ مِنَ الْمُسَحَّرٖينَۚ ﴿١٥٣﴾
مَٓا اَنْتَ اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُنَاۚ فَاْتِ بِاٰيَةٍ اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِقٖينَ ﴿١٥٤﴾
قَالَ هٰذِهٖ نَاقَةٌ لَهَا شِرْبٌ وَلَكُمْ شِرْبُ يَوْمٍ مَعْلُومٍۚ ﴿١٥٥﴾
وَلَا تَمَسُّوهَا بِسُٓوءٍ فَيَاْخُذَكُمْ عَذَابُ يَوْمٍ عَظٖيمٍ ﴿١٥٦﴾ فَعَقَرُوهَا
فَاَصْبَحُوا نَادِمٖينَۙ ﴿١٥٧﴾ فَاَخَذَهُمُ الْعَذَابُۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَةًۜ
وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٥٨﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَزٖيزُ الرَّحٖيمُ ﴿١٥٩﴾

**137.** “Ev, bitenê kevneşopên berê ne. (Hemû însan dijîn û dimirin, ji vê pê ve tiştekî din tune.)”

**138.** “Ezab jî li me nayê kirin.”

**139.** Wî derewandin, me jî ew helak kir . Bêguman di vê de (li ser mijara ku wê Allah alîkarîya dostên xwe bike û dijminên xwe jî helak bike) ayetek heye. Jixwe pirên wan ne mumîn in.

**140.** Rabbê te bêguman (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**141.** (Qewmê) Semûd jî pêxemberên şandî înkar kirin.

**142.** Wê demê birayê wan Salih ji wan re got: “Hûn (ji Allah) natirsin û xwe naparêzin?”

**143.** “Bêguman ez ji bo we pêxemberekî ewledar/emîn im.”

**144.** “Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îtaeta min bikin.”

**145.** “(Di muqabilê vê dawet û teblîxa xwe de) ez ji we tu heqekî naxwazim. Heqê min li ser (Allah e ku ew) Rabbê aleman e.

**146.** “Ma hûn guman dikin ku hûn ê li ser ewledarîyê (di halê xwe de) bên terikandin.”

**147.** “Di nava bexçeyan û kanîyan de.”

**148.** “Di nava çandinîyan û darxurmeyên gihiştî de.”

**149.** “Hûn ji bo şaqizîtîyê (şanîkirinê) di çiyan de bi hostayî xanîyan diqewêrin.”

**150.** “Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îtaeta min bikin.”

**151.** Îtaeta emrê musrîfan (kesên ji hedê xwe borîne) nekin.”

**152.** “Ew in ku; li ser rûyê erdê fesadîyê dikin, islah nakin.”

**153.** Gotin: “Bi rastî tu ji ew ên ku sêhr li wan hatîye kirin î.”

**154.** “Tu jî weke me ji însanek pê ve ne tiştekî din î. Eger tu rastbêj î, de ka ayetek/mucîzeyek bîne (em binêrin).”

**155.** Got: “Ha ev deveyek e. Heqê vexwarina avê rojekî jê re ye û rojekî diyar jî ji we re ye.”

**156.** “Hûn bi xerabî têkilî wî nebin! Nexwe wê ezabê rojeke mezin bi we bigire.”

**157.** Wana ew serjêkirin û poşman bûn.

**158.** Li ser vêya ezab bi wan girt. Bêguman di vê de (li ser mijara ku wê Allah alîkarîya dostên xwe bike û dijminên xwe jî helak bike) ayetek heye. Jixwe pirên wan ne mumîn in.

**159.** Rabbê te bêguman (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

كَذَّبَتْ قَوْمُ لُوطٍۨ الْمُرْسَلِينَۚ ﴿١٦٠﴾ اِذْ قَالَ لَهُمْ اَخُوهُمْ لُوطٌ
اَلَا تَتَّقُونَۚ ﴿١٦١﴾ اِنّ۪ي لَكُمْ رَسُولٌ اَم۪ينٌۙ ﴿١٦٢﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَط۪يعُونِۚ ﴿١٦٣﴾
وَمَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍۚ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلٰى رَبِّ الْعَالَم۪ينَۜ ﴿١٦٤﴾
اَتَاْتُونَ الذُّكْرَانَ مِنَ الْعَالَم۪ينَۙ ﴿١٦٥﴾ وَتَذَرُونَ مَا خَلَقَ لَكُمْ رَبُّكُمْ
مِنْ اَزْوَاجِكُمْۜ بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ عَادُونَ ﴿١٦٦﴾ قَالُوا لَئِنْ لَمْ تَنْتَهِ يَا لُوطُ
لَتَكُونَنَّ مِنَ الْمُخْرَج۪ينَ ﴿١٦٧﴾ قَالَ اِنّ۪ي لِعَمَلِكُمْ مِنَ الْقَال۪ينَۜ ﴿١٦٨﴾
رَبِّ نَجِّن۪ي وَاَهْل۪ي مِمَّا يَعْمَلُونَ ﴿١٦٩﴾ فَنَجَّيْنَاهُ وَاَهْلَهُٓ اَجْمَع۪ينَۙ ﴿١٧٠﴾
اِلَّا عَجُوزًا فِي الْغَابِر۪ينَۚ ﴿١٧١﴾ ثُمَّ دَمَّرْنَا الْاٰخَر۪ينَۚ ﴿١٧٢﴾ وَاَمْطَرْنَا
عَلَيْهِمْ مَطَرًاۚ فَسَٓاءَ مَطَرُ الْمُنْذَر۪ينَ ﴿١٧٣﴾ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَةًۜ وَمَا كَانَ
اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِن۪ينَ ﴿١٧٤﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَز۪يزُ الرَّح۪يمُ ﴿١٧٥﴾ كَذَّبَ
اَصْحَابُ لْـَٔيْكَةِ الْمُرْسَل۪ينَۚ ﴿١٧٦﴾ اِذْ قَالَ لَهُمْ شُعَيْبٌ اَلَا تَتَّقُونَۚ ﴿١٧٧﴾
اِنّ۪ي لَكُمْ رَسُولٌ اَم۪ينٌۙ ﴿١٧٨﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَط۪يعُونِۚ ﴿١٧٩﴾ وَمَٓا اَسْـَٔلُكُمْ
عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍۚ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلٰى رَبِّ الْعَالَم۪ينَۜ ﴿١٨٠﴾ اَوْفُوا الْكَيْلَ
وَلَا تَكُونُوا مِنَ الْمُخْسِر۪ينَۚ ﴿١٨١﴾ وَزِنُوا بِالْقِسْطَاسِ الْمُسْتَق۪يمِۚ ﴿١٨٢﴾
وَلَا تَبْخَسُوا النَّاسَ اَشْيَٓاءَهُمْ وَلَا تَعْثَوْا فِي الْاَرْضِ مُفْسِد۪ينَۚ ﴿١٨٣﴾

**160.** Qewmê Lût, pêxemberên şandî înkar kirin.
**161.** Wê demê birayê wan Lût ji wan re got: “Hûn (ji Allah) natirsin û xwe naparêzin.”
**162.** “Bêguman ez ji bo we pêxemberekî ewledar/emîn im.”
**163.** “(Nexwe) ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îtaeta min bikin.”
**164.** “(Di muqabilê vê dawet û teblîxa xwe de) ez ji we tu heqekî naxwazim. Heqê min li ser (Allah e ku ew) Rabbê aleman e.
**165.** “Ma hûn ji nav însanan nêzî zilaman dibin?”
**166.** “Û hûn dev ji jinên xwe berdidin ku Rabbê we ew ji bo we xuliqandîye. (Nexêr, ne wisan e!) Bi rastî hûn qewmekî jirêderketî ne.”
**167.** Gotin: “Ya Lût! Eger tu dev ji vê karê xwe bernedî, bêguman tu yê bibî ji wan ên ku (ji vê derê) tên derxistin û qewirandin.”
**168.** Got: “Ez bixwe ji vê karê ku hûn dikin dikeriximim.”
**169.** “Rabbê min! Min û malbata min, ji vê amelê ku ew dikin xelas bike.”
**170.** Me ew û hemû ehlê wî xelas kir.
**171.** Lê di nav wan ên paşvemayî de pîrejinek (jina Lût) ne tê de.
**172.** Paşê me ew ên din serûbinî hev kirin.
**173.** Me baran (a keviran) di ser wan de barand. Barana yên hişyarkirî çi qas xerab e.
**174.** Bêguman di vê de (li ser mijara ku wê Allah alîkarîya dostên xwe bike û dijminên xwe jî helak bike) ayetek heye. Jixwe pirên wan ne mumîn in.
**175.** Rabbê te bêguman (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**176.** Gelê Eyke, pêxemberên şandî înkar kirin.
**177.** Wê demê Şuayb ji wan re got: “Hûn (ji Allah) natirsin û xwe naparêzin?”
**178.** “Bêguman ez ji bo we pêxemberekî ewledar/emîn im.”
**179.** “(Nexwe) ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îtaeta min bikin.”
**180.** “(Di muqabilê vê dawet û teblîxa xwe de) ez ji we tu heqekî naxwazim. Heqê min li ser (Allah e ku ew) Rabbê aleman e.”
**181.** “Pîvanê tam/bêkêmasî bipîvin. Nebin ji wan ên bi kêmkerîyê (însanan têxin zerarê).
**182.** “Bi mêzêneke rasterast bikişînin.”
**183.** “Tiştên însanan kêm nekin! Li ser rûyê erdê fesadîyê nekin û alozî/bênîzamî/aşirîtî dernexin.”

وَاتَّقُوا الَّذٖى خَلَقَكُمْ وَالْجِبِلَّةَ الْاَوَّلٖينَ ﴿١٨٤﴾ قَالُٓوا اِنَّمَٓا اَنْتَ
مِنَ الْمُسَحَّرٖينَ ﴿١٨٥﴾ وَمَٓا اَنْتَ اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُنَا وَاِنْ نَظُنُّكَ لَمِنَ
الْكَاذِبٖينَ ﴿١٨٦﴾ فَاَسْقِطْ عَلَيْنَا كِسَفًا مِنَ السَّمَٓاءِ اِنْ كُنْتَ
مِنَ الصَّادِقٖينَ ﴿١٨٧﴾ قَالَ رَبّٖٓى اَعْلَمُ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿١٨٨﴾ فَكَذَّبُوهُ
فَاَخَذَهُمْ عَذَابُ يَوْمِ الظُّلَّةِ اِنَّهُ كَانَ عَذَابَ يَوْمٍ عَظٖيمٍ ﴿١٨٩﴾
اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَةً وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٩٠﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ
لَهُوَ الْعَزٖيزُ الرَّحٖيمُ ﴿١٩١﴾ وَاِنَّهُ لَتَنْزٖيلُ رَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿١٩٢﴾ نَزَلَ
بِهِ الرُّوحُ الْاَمٖينُ ﴿١٩٣﴾ عَلٰى قَلْبِكَ لِتَكُونَ مِنَ الْمُنْذِرٖينَ ﴿١٩٤﴾
بِلِسَانٍ عَرَبِيٍّ مُبٖينٍ ﴿١٩٥﴾ وَاِنَّهُ لَفٖى زُبُرِ الْاَوَّلٖينَ ﴿١٩٦﴾ اَوَلَمْ يَكُنْ
لَهُمْ اٰيَةً اَنْ يَعْلَمَهُ عُلَمٰٓؤُا بَنٖٓى اِسْرَٓائٖيلَ ﴿١٩٧﴾ وَلَوْ نَزَّلْنَاهُ عَلٰى بَعْضِ
الْاَعْجَمٖينَ ﴿١٩٨﴾ فَقَرَاَهُ عَلَيْهِمْ مَا كَانُوا بِهٖ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٩٩﴾ كَذٰلِكَ
سَلَكْنَاهُ فٖى قُلُوبِ الْمُجْرِمٖينَ ﴿٢٠٠﴾ لَا يُؤْمِنُونَ بِهٖ حَتّٰى يَرَوُا
الْعَذَابَ الْاَلٖيمَ ﴿٢٠١﴾ فَيَأْتِيَهُمْ بَغْتَةً وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٢٠٢﴾ فَيَقُولُوا
هَلْ نَحْنُ مُنْظَرُونَ ﴿٢٠٣﴾ اَفَبِعَذَابِنَا يَسْتَعْجِلُونَ ﴿٢٠٤﴾ اَفَرَاَيْتَ
اِنْ مَتَّعْنَاهُمْ سِنٖينَ ﴿٢٠٥﴾ ثُمَّ جَٓاءَهُمْ مَا كَانُوا يُوعَدُونَ ﴿٢٠٦﴾

**184.** “Ji wî yê ku hûn û neslên berîya we xuliqandîye bitirsin û xwe biparêzin.”
**185.** Gotin: “Bi rastî tu yek ji wan ên ku bi sêhrê ketine yî.”
**186.** “Tu jî weke me însanek î. Teqez em bawer in ku tu ji derewkeran î.”
**187.** “Eger tu di gotina xwe de rastî de ka ji esmanan parçeyekî bi ser me de bîne xwarê.”
**188.** Got: “Rabbê min bi kar û kirinên we çêtir dizane.”
**189.** Wî derewandin. Ezabê rojeke bi sî/bi ewr wan girt. Bêguman ew ezabê rojeke mezin bû.
**190.** Bêguman di vê de (li ser mijara ku wê Allah alîkarîya dostên xwe bike û dijminên xwe jî helak bike) ayetek heye. Jixwe pirên wan ne mumîn in.
**191.** Rabbê te bêguman (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.
**192.** Bêguman ew (Qur'an), daxistîyê ya ji (Allah ê) Rabbê aleman e.
**193.** Ruhu'l Emîn (Cibrîl) ew nazil kiriye.
**194.** Ji bo ku tu bibî ji hişyarkeran li ser qelbê te (wehîy kir).
**195.** Bi Erebîyeke fesîh/vikîvekirî.
**196.** Bêguman ew (Qur'an), di Kitêbên yên berê de jî heye.
**197.** Ma qey ji wan re ne delîlek e ku, ulemayê Benî Îsraîl wê (Qur'anê) nas dikin.
**198.** Eger me ew (Qur'an) ji yekî Erebî nizane/acem re daxistana.
**199.** Û wî, ew (Qur'an) ji wan re bixwendana dîsa jî îman pê nedianîn.
**200.** Ha wiha, em vê (înkar û tinazkarîya pêxemberan) di qelbê gunehkarên mucrîm/sûcdar de bi cih dikin.
**201.** Hetanî ku wê ezaba biêş û jan nebînin bi wê îman naynin.
(Ji bo sebebên ku ji fêmkirina heqîyê re dibin asteng bnr. 6/En'am, 25)
**202.** Ew (ezab) di demeke ku qet haya wan jê tune de ji nîşka ve ji wan re tê.
**203.** Dibêjin: “Gelo ma ji me re muhletek tune?”
**204.** Qey ew ezabê me bi lezgînî dixwazin?
**205.** Fikrê te çi ye? (Ka bibêje!) Eger em bi salan wan îstîfade bikin.
**206.** Paşê ew (ezab) ê ku pê hatine tehdîtkirin ji wan re bê,

مَٓا اَغْنٰى عَنْهُمْ مَا كَانُوا يُمَتَّعُونَۜ ﴿٢٠٧﴾ وَمَٓا اَهْلَكْنَا مِنْ قَرْيَةٍ
اِلَّا لَهَا مُنْذِرُونَۗ ﴿٢٠٨﴾ ذِكْرٰىۛ وَمَا كُنَّا ظَالِمِينَ ﴿٢٠٩﴾ وَمَا تَنَزَّلَتْ بِهِ
الشَّيَاطِينُ ﴿٢١٠﴾ وَمَا يَنْبَغِي لَهُمْ وَمَا يَسْتَطِيعُونَۜ ﴿٢١١﴾ اِنَّهُمْ عَنِ السَّمْعِ
لَمَعْزُولُونَۜ ﴿٢١٢﴾ فَلَا تَدْعُ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ فَتَكُونَ مِنَ الْمُعَذَّبِينَۚ ﴿٢١٣﴾
وَاَنْذِرْ عَشِيرَتَكَ الْاَقْرَبِينَۙ ﴿٢١٤﴾ وَاخْفِضْ جَنَاحَكَ لِمَنِ اتَّبَعَكَ
مِنَ الْمُؤْمِنِينَۚ ﴿٢١٥﴾ فَاِنْ عَصَوْكَ فَقُلْ اِنّ۪ي بَر۪ٓيءٌ مِمَّا تَعْمَلُونَۚ ﴿٢١٦﴾
وَتَوَكَّلْ عَلَى الْعَز۪يزِ الرَّح۪يمِۙ ﴿٢١٧﴾ اَلَّذ۪ي يَرٰيكَ ح۪ينَ تَقُومُۙ ﴿٢١٨﴾
وَتَقَلُّبَكَ فِي السَّاجِد۪ينَ ﴿٢١٩﴾ اِنَّهُ هُوَ السَّم۪يعُ الْعَل۪يمُ ﴿٢٢٠﴾ هَلْ اُنَبِّئُكُمْ
عَلٰى مَنْ تَنَزَّلُ الشَّيَاط۪ينُۜ ﴿٢٢١﴾ تَنَزَّلُ عَلٰى كُلِّ اَفَّاكٍ اَث۪يمٍۙ ﴿٢٢٢﴾ يُلْقُونَ
السَّمْعَ وَاَكْثَرُهُمْ كَاذِبُونَۜ ﴿٢٢٣﴾ وَالشُّعَرَٓاءُ يَتَّبِعُهُمُ الْغَاوُ۫نَۜ ﴿٢٢٤﴾
اَلَمْ تَرَ اَنَّهُمْ ف۪ي كُلِّ وَادٍ يَه۪يمُونَۙ ﴿٢٢٥﴾ وَاَنَّهُمْ يَقُولُونَ مَا لَا يَفْعَلُونَۙ ﴿٢٢٦﴾
اِلَّا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ وَذَكَرُوا اللّٰهَ كَث۪يرًا وَانْتَصَرُوا
مِنْ بَعْدِ مَا ظُلِمُواۜ وَسَيَعْلَمُ الَّذ۪ينَ ظَلَمُٓوا اَيَّ مُنْقَلَبٍ يَنْقَلِبُونَ ﴿٢٢٧﴾

## سُورَةُ النَّمْلِ

مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَلَاثٌ وَتِسْعُونَ اٰيَةً

**207.** (A niha) ew îstîfadeî (ya nîmetan, li dij ezabê) qet tu feyde nade wan.

**208.** Çi bajarekî ku me helak kiribe, her ji wan re hişyarkerek hebûye.

**209.** (Ev) bibîrxistinek û şîretek e. Em (tu car) nebûne ji zilimkaran.

**210.** Wê (Qur'anê), ne şeytanan daxistîye.

**211.** Ev bi wan nakeve û jixwe nikarin vê bikin jî.

**212.** Teqez ew ji bihîstina (axaftinên Mele-î A'lâ) hatine dûrkirin.

**213.** Ligel Allah ji îlâhekî din re dûa neke. Paşê tu yê bibî ji ew ên tên ezabkirinê.

**214.** Bi hişyarkirina eşîr û eqrebayên xwe yên nêz (dest bi kar bike).

**215.** Tu, li ser mumînên dane pey te baskên xwe (yên şefqetê) bivezilîne/deyne.

**216.** Eger ji te re îsyan bikin bibêje: “Ez ji kar û kirinên we dûr im/berî me.”

**217.** Xwe bispêre wî (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û ew ê ku (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**218.** Ew e ku dema tu (ji bo nimêjê) radibî qiyamê te dibîne.

**219.** Ger û vegerîna te ya navbera secdevanan de jî (dibîne).

**220.** Bêguman ew, (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**221.** Ma ez we agahdar bikim ku şeytan bi ser kî ve dadikevin?

**222.** Ew li ser her kesên zêde gunehkar û pir bêbextîyan dikin re dadikevin.

**223.** (Ev kahîn) gûh didin (şeytanan) û pirên wan jî derewker in.

**224.** (Heçî ew ên) şair jî kesên har/hêç didin pey wan.

**225.** Ma qey tu nabînî ku ew di her newalê de bi şaşîtî difetilin/digerin?

**226.** Û ew, tiştên ku nekirine (weke ku kiribin) dibêjin.

**227.** Ew (şair) ên îman anîne û amelên salih kirine û ew ên Allah pir zikir dikin û piştî ku zilim li wan dibe heyfa xwe distînin ne tê de. Ew ên zilimkar di pir nêz de wê bibînin bê ka bi şoreşekî/înqilabekî çawa wê bên qelibandin.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
طٰسٓ تِلْكَ اٰيَاتُ الْقُرْاٰنِ وَكِتَابٍ مُب۪ينٍۙ ﴿١﴾ هُدًى وَبُشْرٰى
لِلْمُؤْمِن۪ينَۙ ﴿٢﴾ اَلَّذ۪ينَ يُق۪يمُونَ الصَّلٰوةَ وَيُؤْتُونَ الزَّكٰوةَ وَهُمْ
بِالْاٰخِرَةِ هُمْ يُوقِنُونَ ﴿٣﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ زَيَّنَّا لَهُمْ
اَعْمَالَهُمْ فَهُمْ يَعْمَهُونَۜ ﴿٤﴾ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ لَهُمْ سُٓوءُ الْعَذَابِ وَهُمْ
فِي الْاٰخِرَةِ هُمُ الْاَخْسَرُونَ ﴿٥﴾ وَاِنَّكَ لَتُلَقَّى الْقُرْاٰنَ مِنْ لَدُنْ حَك۪يمٍ
عَل۪يمٍ ﴿٦﴾ اِذْ قَالَ مُوسٰى لِاَهْلِه۪ٓ اِنّ۪ٓي اٰنَسْتُ نَارًاۜ سَاٰت۪يكُمْ مِنْهَا بِخَبَرٍ
اَوْ اٰت۪يكُمْ بِشِهَابٍ قَبَسٍ لَعَلَّكُمْ تَصْطَلُونَ ﴿٧﴾ فَلَمَّا جَٓاءَهَا نُودِيَ
اَنْ بُورِكَ مَنْ فِي النَّارِ وَمَنْ حَوْلَهَاۜ وَسُبْحَانَ اللّٰهِ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿٨﴾
يَا مُوسٰٓى اِنَّهُٓ اَنَا اللّٰهُ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُۙ ﴿٩﴾ وَاَلْقِ عَصَاكَۜ فَلَمَّا رَاٰهَا
تَهْتَزُّ كَاَنَّهَا جَٓانٌّ وَلّٰى مُدْبِرًا وَلَمْ يُعَقِّبْۜ يَا مُوسٰى لَا تَخَفْ اِنّ۪ي
لَا يَخَافُ لَدَيَّ الْمُرْسَلُونَۗ ﴿١٠﴾ اِلَّا مَنْ ظَلَمَ ثُمَّ بَدَّلَ حُسْنًا بَعْدَ
سُٓوءٍ فَاِنّ۪ي غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿١١﴾ وَاَدْخِلْ يَدَكَ ف۪ي جَيْبِكَ تَخْرُجْ بَيْضَٓاءَ
مِنْ غَيْرِ سُٓوءٍ ف۪ي تِسْعِ اٰيَاتٍ اِلٰى فِرْعَوْنَ وَقَوْمِه۪ۜ اِنَّهُمْ كَانُوا
قَوْمًا فَاسِق۪ينَ ﴿١٢﴾ فَلَمَّا جَٓاءَتْهُمْ اٰيَاتُنَا مُبْصِرَةً قَالُوا هٰذَا سِحْرٌ مُب۪ينٌۚ ﴿١٣﴾

## 27. SÛREYA NEML

*(Sûreya Neml, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û not û sê (93) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya bîst û heftemîn e. Sûreya Neml, navê xwe ji ayeta 18. distîne ku di wê ayetê de behsa newala mîro tê kirin. Di Qur'anê de sûreya ku besmele di navê de dibore bitenê ev sûre ye. Di vê sûreyê de bi gelemperî behsa nimêj û zekât û jiyana axîretê tê kirin. Qiseyên Mûsa û Dawûd û Lût û Salih (asm) bi kurtahî, qiseya Suleyman (as) û Belqis jî bi teferûet tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ta. Sîn. Ev, ayetên Qur'anê û Kitêba vikîvekirî ye.

**2.** Ji bo mumînan hîdayet û mizgîn e.

**3.** Ew (mumîn) in ku nimêja xwe rasterast dikin û zekâtê didin û li ser yeqînê îman bi axîretê jî tînin.

**4.** Bêguman ew ên bi axîretê nebawer in, me amelên wan ji wan re xemilandî nîşan daye. Her wiha ew di nava şaşîtîyê de digevizin.




**5.** Ji ew ên wisan re ezaba herî xerab heye û yên di axîretê de herî zêde di xusranê de ne jî ew in.

**6.** Bêguman tu vê Qur'anê ji wî (Allah) ê (xwedî hikum û hikmet) Hakîm û (zanayê her tiştî) Alîm distînî.

**7.** (Bi bîr bînin!) Dema ku Mûsa ji malbata xwe re gotibû: "Min agirek dît. Ez ê herîm ji we re agahîyekî an jî ji bo ku hûn xwe germ bikin bizotekî agir bînim."

**8.** Wextê gihîşte wê derê lê hate gazîkirin: "Ew ên li cem agir û yên li hawîrdora wî pîrozkirî ne. Allahê Rabbê aleman ji hemû kêmasîyan munezzeh e."

**9.** "Ya Mûsa! Ez, Allahê (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm im."

**10.** "Gopalê xwe bavêje!" (Dema gopalê xwe avêt û) dît ku weke marekî dilive/tevdigere, li pey xwe nezivirî û revîya. "Ya Mûsa! Netirse! Bêguman ên pêxember li cem min natirsin."

**11.** "Ew ên zilimkar ne tê de... Heçî ew ên piştî xerabîyê li qencîyê vedigerin, bêguman ez (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm im."

**12.** "Destê xwe bêxe bin çengê xwe. Bê xerabî/bê nexweşî wê sipspî derkeve. (Ev,) ji nav neh mucîzeyan yek e ku ji Firewn û ji qewmê wî re hatîye şandin. Bêşik ew, qewmekî fasiq in."

**13.** Çi dema ew ayetên me yên ku (mirovan) xwedî besîret dikin ji wan re hat, gotin: "Ev, sêhreke vikîvekirî ye."

وَجَحَدُوا بِهَا وَاسْتَيْقَنَتْهَٓا اَنْفُسُهُمْ ظُلْمًا وَعُلُوًّاۜ فَانْظُرْ
كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُفْسِدٖينَ ﴿١٤﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا دَاوُ۫دَ وَسُلَيْمٰنَ
عِلْمًاۚ وَقَالَا الْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذٖى فَضَّلَنَا عَلٰى كَثٖيرٍ مِنْ عِبَادِهِ
الْمُؤْمِنٖينَ ﴿١٥﴾ وَوَرِثَ سُلَيْمٰنُ دَاوُ۫دَ وَقَالَ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ عُلِّمْنَا
مَنْطِقَ الطَّيْرِ وَاُو۫تٖينَا مِنْ كُلِّ شَيْءٍۜ اِنَّ هٰذَا لَهُوَ الْفَضْلُ
الْمُبٖينُ ﴿١٦﴾ وَحُشِرَ لِسُلَيْمٰنَ جُنُودُهُ مِنَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِ
وَالطَّيْرِ فَهُمْ يُوزَعُونَ ﴿١٧﴾ حَتّٰٓى اِذَٓا اَتَوْا عَلٰى وَادِ النَّمْلِۙ قَالَتْ
نَمْلَةٌ يَٓا اَيُّهَا النَّمْلُ ادْخُلُوا مَسَاكِنَكُمْۚ لَا يَحْطِمَنَّكُمْ
سُلَيْمٰنُ وَجُنُودُهُۙ وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿١٨﴾ فَتَبَسَّمَ ضَاحِكًا
مِنْ قَوْلِهَا وَقَالَ رَبِّ اَوْزِعْنٖٓي اَنْ اَشْكُرَ نِعْمَتَكَ الَّتٖٓى اَنْعَمْتَ
عَلَيَّ وَعَلٰى وَالِدَيَّ وَاَنْ اَعْمَلَ صَالِحًا تَرْضٰيهُ وَاَدْخِلْنٖى بِرَحْمَتِكَ
فٖى عِبَادِكَ الصَّالِحٖينَ ﴿١٩﴾ وَتَفَقَّدَ الطَّيْرَ فَقَالَ مَا لِيَ لَٓا اَرَى
الْهُدْهُدَۘ اَمْ كَانَ مِنَ الْغَٓائِبٖينَ ﴿٢٠﴾ لَاُعَذِّبَنَّهُ عَذَابًا شَدٖيدًا
اَوْ لَاَاذْبَحَنَّهُٓ اَوْ لَيَأْتِيَنّٖى بِسُلْطَانٍ مُبٖينٍ ﴿٢١﴾ فَمَكَثَ غَيْرَ بَعٖيدٍ
فَقَالَ اَحَطْتُ بِمَا لَمْ تُحِطْ بِهٖ وَجِئْتُكَ مِنْ سَبَاٍ بِنَبَاٍ يَقٖينٍ ﴿٢٢﴾

**14.** Digel ku di nefsa xwe de bawer dikin (ev ayet û mucîze rast in) jî ji ber zilm û quretîya xwe, ew derewandin. De binêre ka aqûbeta mufsîdan çawa dibe.

**15.** Sond be, me ilim dabû Dawûd û Suleyman. Gotin: "Hamd ji bo wî Allahê re be ku em di ser gelek evdên xwe yên mumîn de girtine."

**16.** Suleyman, ji Dawûd re bû waris (ket şûna wî). Got: "Gelî însanan! Zimanê teyran bi me hatîye hînkirin û ji her tiştî ji me re hatîye dayîn. Bêguman ev, (Belê ev,) lutf û keremeke vikîvekirî ye."

**17.** (Demekê) artêşên ji cin û ji însan û ji teyran pêk hatî, di hizûra Suleyman de civîyan. Ew, (ji terefê Suleyman ve) dihatin sewq û îdarekirin.

**18.** Dema ku (Suleyman û artêşa wî) hatin newala mîroyan, mîroyekê wiha got: "Gelî mîroyan! Bikevin kunên/qulên xwe. Suleyman û artêşên wî bila bêhemdî we nepelçiqînin û neborin."

**19.** (Suleyman), li ser gotina wê (mîroyê) besimî û kenîya. Got: "Rabbê min! Ji ber van nîmetên ku te daye min û dê û bavê min, îlhamê bide min ku ez şikur bikim/min berhêla şukrê bike. Min li ser amelên salih muweffeq bike. Û bi rahmeta xwe min bixe nava evdên xwe yên salih."

**20.** Piştî venihêrtina/kontrola teyran wiha got: "Çima ez Hudhud (Dunikul) nabînim? Ma qey ew bûye ji windabûyîyan?"

**21.** "An wê ji min re delîlekî eşkere bîne (uzra xwe nîşanî min bide ku ew li ku derê bû) an ez ê ezabekî dijwar bidimê an jî ez ê wî serjê bikim."

**22.** Berîya ku demeke dirêj bibore (Hudhud hat û) got: "Ez bûme xwedî agahîyekî ku tu pê nizanî û min ji welatê Sebe xebereke qethî anîye."

اِنّ۪ي وَجَدْتُ امْرَاَةً تَمْلِكُهُمْ وَاُو۫تِيَتْ مِنْ كُلِّ شَيْءٍ وَلَهَا
عَرْشٌ عَظ۪يمٌ ﴿٢٣﴾ وَجَدْتُهَا وَقَوْمَهَا يَسْجُدُونَ لِلشَّمْسِ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ وَزَيَّنَ لَهُمُ الشَّيْطَانُ اَعْمَالَهُمْ فَصَدَّهُمْ عَنِ السَّب۪يلِ فَهُمْ
لَا يَهْتَدُونَۙ ﴿٢٤﴾ اَلَّا يَسْجُدُوا لِلّٰهِ الَّذ۪ي يُخْرِجُ الْخَبْءَ
فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَيَعْلَمُ مَا تُخْفُونَ وَمَا تُعْلِنُونَ ﴿٢٥﴾ اَللّٰهُ
لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ رَبُّ الْعَرْشِ الْعَظ۪يمِ ﴿٢٦﴾ قَالَ سَنَنْظُرُ اَصَدَقْتَ
اَمْ كُنْتَ مِنَ الْكَاذِب۪ينَ ﴿٢٧﴾ اِذْهَبْ بِكِتَاب۪ي هٰذَا فَاَلْقِهْ اِلَيْهِمْ
ثُمَّ تَوَلَّ عَنْهُمْ فَانْظُرْ مَاذَا يَرْجِعُونَ ﴿٢٨﴾ قَالَتْ يَٓا اَيُّهَا الْمَلَؤُا
اِنّ۪ٓي اُلْقِيَ اِلَيَّ كِتَابٌ كَر۪يمٌ ﴿٢٩﴾ اِنَّهُ مِنْ سُلَيْمٰنَ وَاِنَّهُ بِسْمِ اللّٰهِ
الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِۙ ﴿٣٠﴾ اَلَّا تَعْلُوا عَلَيَّ وَاْتُون۪ي مُسْلِم۪ينَ ﴿٣١﴾ قَالَتْ
يَٓا اَيُّهَا الْمَلَؤُا اَفْتُون۪ي ف۪ٓي اَمْر۪يۚ مَا كُنْتُ قَاطِعَةً اَمْرًا حَتّٰى
تَشْهَدُونِ ﴿٣٢﴾ قَالُوا نَحْنُ اُو۬لُوا قُوَّةٍ وَاُو۬لُوا بَأْسٍ شَد۪يدٍ وَالْاَمْرُ
اِلَيْكِ فَانْظُر۪ي مَاذَا تَأْمُر۪ينَ ﴿٣٣﴾ قَالَتْ اِنَّ الْمُلُوكَ اِذَا دَخَلُوا
قَرْيَةً اَفْسَدُوهَا وَجَعَلُٓوا اَعِزَّةَ اَهْلِهَٓا اَذِلَّةًۚ وَكَذٰلِكَ يَفْعَلُونَ ﴿٣٤﴾
وَاِنّ۪ي مُرْسِلَةٌ اِلَيْهِمْ بِهَدِيَّةٍ فَنَاظِرَةٌ بِمَ يَرْجِعُ الْمُرْسَلُونَ ﴿٣٥﴾




**23.** "Min li wê derê dît ku jinek hikumdarîyê li wan dikir. (Bi navê hêz û nîmetan) her tişt jê re hatîye dayîn. Textekî wê yê mezin jî heye."

**24.** "Min wê û qewmê wê dît ku dev ji Allah berdane û ji rojê re secde dikin. Şeytan amelên wan li wan xemilandîye û wan ji rê (ya rasterast) girtîye. (Ji ber vêya) ew jî rêya rast nabînin."

**25.** "(Heta ku) ji bo wî Allahê ku li erd û esmanan (rizqên) veşartî derdixe holê û tiştên hûn vedişêrin û eşkere dikin jî dizane re neçin secdê (şeytan amelên wan li wan xemiland û wan ji rêya rast girt)."

**26.** "Allah... Ji wî pê ve qet tu îlâh (ên ku îbadetê heq dikin) tune. Rabbê erşê ezîm e."

**27.** Got: "Em ê binêrin ka tu ji rastbêjan î an jî ji derewkeran î."

**28.** "Tu bi vê nameya min here cem wan û name deynê ba wan. Paşê ji wan dûr bikeve û binêre ka wê çi bersivê bidin."

**29.** (Hikumdar) got: "Gelî giregiran! Nameyeke hêja ji min re hatîye."

**30.** "Ev (name), ji Suleyman e û ew bi: 'Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm' (dest pê dike)."

**31.** (Û wiha pê de diçe:) 'Li hemberî min serî hilnedin û hûn wek evdên muslîm/ew ên şirkê terk kirine û berê xwe bi tewhîdê dane Allah, werin cem min.'"

**32.** Got: "Gelî giregiran! Di vê karê min de fikrê xwe bbiêjin. Eger parmendîya we/tevîbûna we nebe ez ne ew im ku qerarekî qethî bidim."

**33.** Gotin: "Em xwedî hêz û şervanên dijwar in. Qerar ya te ye. Binêre. Êdî tu çi ferman dikî..."

**34.** Got: "Dema ku hikumdar dikevin bajarekî, wê derê xerab dikin û rûmetdarên xelkê wê derê zelîl dikin. (Erê,) ew a wiha dikin."

**35.** "Ez ê ji wan re xelatekê bişînim û ez ê binerim ka qasid dê bi çi vegerin."

فَلَمَّا جَٓاءَ سُلَيْمٰنَ قَالَ اَتُمِدُّونَنِ بِمَالٍ فَمَٓا اٰتٰينِۦَ اللّٰهُ خَيْرٌ مِمَّٓا
اٰتٰيكُمْۚ بَلْ اَنْتُمْ بِهَدِيَّتِكُمْ تَفْرَحُونَ ﴿٣٦﴾ اِرْجِعْ اِلَيْهِمْ فَلَنَاْتِيَنَّهُمْ
بِجُنُودٍ لَا قِبَلَ لَهُمْ بِهَا وَلَنُخْرِجَنَّهُمْ مِنْهَٓا اَذِلَّةً وَهُمْ صَاغِرُونَ ﴿٣٧﴾
قَالَ يَٓا اَيُّهَا الْمَلَؤُا اَيُّكُمْ يَاْتِينِي بِعَرْشِهَا قَبْلَ اَنْ يَاْتُونِي مُسْلِمِينَ ﴿٣٨﴾
قَالَ عِفْرِيتٌ مِنَ الْجِنِّ اَنَا اٰتِيكَ بِهِ قَبْلَ اَنْ تَقُومَ مِنْ مَقَامِكَۚ وَاِنِّي
عَلَيْهِ لَقَوِيٌّ اَمِينٌ ﴿٣٩﴾ قَالَ الَّذِي عِنْدَهُ عِلْمٌ مِنَ الْكِتَابِ اَنَا اٰتِيكَ
بِهِ قَبْلَ اَنْ يَرْتَدَّ اِلَيْكَ طَرْفُكَۜ فَلَمَّا رَاٰهُ مُسْتَقِرًّا عِنْدَهُ قَالَ هٰذَا
مِنْ فَضْلِ رَبِّيۗ لِيَبْلُوَنِيٓ ءَاَشْكُرُ اَمْ اَكْفُرُۜ وَمَنْ شَكَرَ فَاِنَّمَا يَشْكُرُ
لِنَفْسِهِۚ وَمَنْ كَفَرَ فَاِنَّ رَبِّي غَنِيٌّ كَرِيمٌ ﴿٤٠﴾ قَالَ نَكِّرُوا لَهَا عَرْشَهَا
نَنْظُرْ اَتَهْتَدِٓي اَمْ تَكُونُ مِنَ الَّذِينَ لَا يَهْتَدُونَ ﴿٤١﴾ فَلَمَّا جَٓاءَتْ
قِيلَ اَهٰكَذَا عَرْشُكِۜ قَالَتْ كَاَنَّهُ هُوَۚ وَاُو۫تِينَا الْعِلْمَ مِنْ قَبْلِهَا وَكُنَّا
مُسْلِمِينَ ﴿٤٢﴾ وَصَدَّهَا مَا كَانَتْ تَعْبُدُ مِنْ دُونِ اللّٰهِۜ اِنَّهَا كَانَتْ
مِنْ قَوْمٍ كَافِرِينَ ﴿٤٣﴾ قِيلَ لَهَا ادْخُلِي الصَّرْحَۚ فَلَمَّا رَاَتْهُ حَسِبَتْهُ لُجَّةً
وَكَشَفَتْ عَنْ سَاقَيْهَاۜ قَالَ اِنَّهُ صَرْحٌ مُمَرَّدٌ مِنْ قَوَارِيرَۜ قَالَتْ
رَبِّ اِنِّي ظَلَمْتُ نَفْسِي وَاَسْلَمْتُ مَعَ سُلَيْمٰنَ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿٤٤﴾

**36.** Dema (qasid) hat cem Suleyman; (Suleyman) got: "Ma hûn dixwazin bi mal min qayîl bikin/piştgirîya min bikin (û çavên min girê bidin)? Tiştê ku Allah daye min ji tiştên ku daye we herî bixêrtir e. (Nexêr, ne wisan e!) Hûn (dema hevdu xelat dikin) bi xelatên xwe kêfxweş dibin û dinepixin (ne ez)."

**37.** "Li wan vegere (û vê hinarîya min rabigihîne:) 'Sond be, em ê bi artêşên wisan bi ser wan ve bigirin ku wê qet nikaribin li dij wan derkevin û wê bi zelîltî û bi kêmxistî wê ji wir derxînin.'"

**38.** (Suleyman) got: "Gelî giregiran! Berîya ku ew, wek evdên muslîm/ew ên şirkê terk kirine û berê xwe bi tewhîdê dane Allah werin cem min, kî ji we dê bikaribe textê wê ji min re bîne?"

**39.** Ji cinan îfrîtekî got: "Berîya ku tu ji cihê xwe rabî, ez ê bikaribim wê ji te re bînim. Bêguman bi qasî ku bikaribim (vî karî pêk bînim) ez yekî bi hêz û ewledar im."

**40.** Ew kesê ku ji Kitêbê ilmek li cem wî hebû jî wiha got: "Berîya ku tu çavê xwe vekî û bigirî ez dikarim wê ji te re bînim." Dema (textê wê) li cem xwe bicihbûyî dît (got:) "Ev, lutf û kerema Rabbê min e. Ji ber ku ka ez ê şikur bikim an jî ez ê bibim ji nankoran, min îmtîhan kir. Her kî şikur bike, wî ji bo xwe şikur kiriye. Kî jî nankorî bike, bêguman Rabbê min (ew ê her tişt muhtacê wî ye lê ew ne hewcedarê tu kesî) Xaniy û (yê destvekirî û lutfa wî zêde) Kerîm e.

**41.** (Suleyman) got: "Textê wê biguherînin. Ka wê fêm bike an jî wê bibe ji tênegihiştîyan?"

**42.** Dema ku (jin) hat jê re hate gotin: "Textê te jî wisan e?" Got: "Her wekî ew bixwe ye. Jixwe berîya vê (li ser nubuweta Suleyman) ji me re ilim hatibû dayîn û em bibûn ji evdên muslîm/ew ên şirkê terk kirine û berê xwe bi tewhîdê dane Allah."

**43.** Ji xeynî Allah tiştên ku îbadet li wan dihate kirin, ew ji (îslâmê/tewhîdê) dabû paş. Bêguman ew ji qewmekî kafir bû.

**44.** Jê re hate gotin: "Têkeve Qesrê." Dema ku (qesr) dît zen kir ku ew aveke kûr e (û ji bo bikeve avê) daw û delingên xwe hilda. (Suleyman) got: "Ew, qesrekî ji cama şefaf e û hatîye rastkirin." (Jin) got: "Rabbê min! Bi rastî min li xwe zilim kir. Ez bi Suleyman re teslîmî Rabbê aleman bûme."

وَلَقَدْ اَرْسَلْنَٓا اِلٰى ثَمُودَ اَخَاهُمْ صَالِحًا اَنِ اعْبُدُوا
اللّٰهَ فَاِذَا هُمْ فَرِيقَانِ يَخْتَصِمُونَ ﴿٤٥﴾ قَالَ يَا قَوْمِ
لِمَ تَسْتَعْجِلُونَ بِالسَّيِّئَةِ قَبْلَ الْحَسَنَةِۚ لَوْلَا تَسْتَغْفِرُونَ
اللّٰهَ لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ ﴿٤٦﴾ قَالُوا اطَّيَّرْنَا بِكَ وَبِمَنْ
مَعَكَۜ قَالَ طَٓائِرُكُمْ عِنْدَ اللّٰهِ بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ تُفْتَنُونَ ﴿٤٧﴾
وَكَانَ فِي الْمَدِينَةِ تِسْعَةُ رَهْطٍ يُفْسِدُونَ
فِي الْاَرْضِ وَلَا يُصْلِحُونَ ﴿٤٨﴾ قَالُوا تَقَاسَمُوا بِاللّٰهِ لَنُبَيِّتَنَّهُ
وَاَهْلَهُ ثُمَّ لَنَقُولَنَّ لِوَلِيِّه۪ مَا شَهِدْنَا مَهْلِكَ اَهْلِه۪ وَاِنَّا
لَصَادِقُونَ ﴿٤٩﴾ وَمَكَرُوا مَكْرًا وَمَكَرْنَا مَكْرًا وَهُمْ
لَا يَشْعُرُونَ ﴿٥٠﴾ فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ مَكْرِهِمْۙ
اَنَّا دَمَّرْنَاهُمْ وَقَوْمَهُمْ اَجْمَع۪ينَ ﴿٥١﴾ فَتِلْكَ بُيُوتُهُمْ خَاوِيَةً
بِمَا ظَلَمُواۜ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَعْلَمُونَ ﴿٥٢﴾ وَاَنْجَيْنَا الَّذ۪ينَ
اٰمَنُوا وَكَانُوا يَتَّقُونَ ﴿٥٣﴾ وَلُوطًا اِذْ قَالَ لِقَوْمِه۪ٓ اَتَاْتُونَ
الْفَاحِشَةَ وَاَنْتُمْ تُبْصِرُونَ ﴿٥٤﴾ اَئِنَّكُمْ لَتَاْتُونَ الرِّجَالَ
شَهْوَةً مِنْ دُونِ النِّسَٓاءِۜ بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ تَجْهَلُونَ ﴿٥٥﴾

**45.** Sond be, ji bo ku (wan gazî bike û) bibêje: "Ji Allah re îbadet bikin." me ji qewmê Semûd re birayên wan Salih şand. (Dema dest bi dawetê kir) hema bûne du kom û bi hev ketin.

(Çi dema ku daweta tewhîdê derdikeve hemberî şirkê di heman demê de dijminatî dest pê dike. Ev neyartî ne li ser helwesta dijwarî-rûnermî û şarmendî-bedewî û xweşbînî-zorbazîya dawetvan an jî muşrîkan e. Ev rewş, ji ber hebûna dijîtî û lihevnekirina di tebîeta heq û batil de ye. Wekî din bnr. 19/Meryem, 41-49; 21/Enbîya, 18; 22/Hecc, 19; 58/Mucadele, 22)

**46.** Got: "Gelî qewmê min! Ma hûn çima berîya qencîyê (berîya rahmeta Allah ji bo ezabê) lezgînîya xerabîyê dikin? De ji bo xwe ji Allah mexfîretê bixwazin, hêvî heye ku merhamet li we bê kirin."

**47.** Gotin: "Tu û ew ên ligel te ji me re bêoxirî anî." Got: "Ew tiştên (hatîye serê we û) hûn bêoxirî dihesibînin, ji îndallah e (hatîye serê we). Belkî hûn qewmek in ku têne îmtîhankirin."

**48.** Di bajar de nijdevaneke/çeteyeke ji neh kesan hebû. Li ser rûyê erdê fesadê dikirin, lê islah nedikirin.

**49.** Di navbera xwe de bi navê Allah sond xwarin û gotin: "Em ê şevekê bavêjin ser wî û malbata wî, paşê em ê ji welîyê wî/xwedîyê wî re bibêjin: "Me kuştina wan bi çav nedîtîye. Bi rastî em rastbêj in."

**50.** Wan kemîn danîn û me jî kemînek danî, lê haya wan jê tune bû.

**51.** Ka binêre ku dawîya kemîna wan çawa qedîyaye? Me ew û qewmê wan tev bi hev re serûbinî hev kirin.

**52.** Ha xanîyên wan! Ji ber zilma wan wêran û xewle. Bêguman ji bo qewmekî zane di vêya de ayet heye.

**53.** Me ew ên ku îman anîne û xwe parastine xelas kirin.

**54.** Me Lût jî (ji qewmê wî re şand). Dema ku wî ji qewmê xwe re wiha gotibû: "Ma hûn hê jî li ber çavan vê fuhşîyatê dikin?"

**55.** "Hûn dev ji jinan berdidin û bi şehwetê nêzî zilaman dibin? (Nexêr, ne wisan e!) Hûn civakeke cahil in."



فَمَا كَانَ جَوَابَ قَوْمِهٖٓ اِلَّٓا اَنْ قَالُٓوا اَخْرِجُٓوا اٰلَ لُوطٍ
مِنْ قَرْيَتِكُمْۚ اِنَّهُمْ اُنَاسٌ يَتَطَهَّرُونَ ﴿٥٦﴾ فَاَنْجَيْنَاهُ وَاَهْلَهُٓ
اِلَّا امْرَاَتَهُۘ قَدَّرْنَاهَا مِنَ الْغَابِرٖينَ ﴿٥٧﴾ وَاَمْطَرْنَا عَلَيْهِمْ
مَطَرًاۚ فَسَٓاءَ مَطَرُ الْمُنْذَرٖينَ ﴿٥٨﴾ قُلِ الْحَمْدُ لِلّٰهِ وَسَلَامٌ
عَلٰى عِبَادِهِ الَّذٖينَ اصْطَفٰىۜ آٰللّٰهُ خَيْرٌ اَمَّا يُشْرِكُونَۜ ﴿٥٩﴾
اَمَّنْ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَاَنْزَلَ لَكُمْ مِنَ السَّمَٓاءِ
مَٓاءًۚ فَاَنْبَتْنَا بِهٖ حَدَٓائِقَ ذَاتَ بَهْجَةٍۚ مَا كَانَ لَكُمْ
اَنْ تُنْبِتُوا شَجَرَهَاۜ ءَاِلٰهٌ مَعَ اللّٰهِۜ بَلْ هُمْ قَوْمٌ يَعْدِلُونَۜ ﴿٦٠﴾
اَمَّنْ جَعَلَ الْاَرْضَ قَرَارًا وَجَعَلَ خِلَالَهَٓا اَنْهَارًا وَجَعَلَ
لَهَا رَوَاسِيَ وَجَعَلَ بَيْنَ الْبَحْرَيْنِ حَاجِزًاۜ ءَاِلٰهٌ مَعَ اللّٰهِۜ بَلْ
اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْلَمُونَۜ ﴿٦١﴾ اَمَّنْ يُجٖيبُ الْمُضْطَرَّ اِذَا
دَعَاهُ وَيَكْشِفُ السُّٓوءَ وَيَجْعَلُكُمْ خُلَفَٓاءَ الْاَرْضِۜ
ءَاِلٰهٌ مَعَ اللّٰهِۜ قَلٖيلًا مَا تَذَكَّرُونَۜ ﴿٦٢﴾ اَمَّنْ يَهْدٖيكُمْ
فٖي ظُلُمَاتِ الْبَرِّ وَالْبَحْرِ وَمَنْ يُرْسِلُ الرِّيَاحَ بُشْرًا بَيْنَ
يَدَيْ رَحْمَتِهٖۜ ءَاِلٰهٌ مَعَ اللّٰهِۜ تَعَالَى اللّٰهُ عَمَّا يُشْرِكُونَۜ ﴿٦٣﴾

**56.** Bersiva qewmê wî her ev bû: “Malbata Lût ji warê xwe nefîy bikin û derxînin. Lewre ew merivên paqij in.”

**57.** Ji xeynî jina wî me ew û malbata wî xelas kirin. Me mayîna wê li paş (ligel ên helakbûyî de) teqdîr kir.

**58.** Me baran (a keviran) di ser wan de barand. Barana yên hişyarkirî çi qas xerab e.

**59.** Bibêje: “Hamd ji Allah re û silav li ser evdên wî yên bijare be.” Ma Allah bixêrtir e an şirîkên (ku ji Allah re) çêdikin?

**60.** (Ew bixêrtir in an) ew (Allah) ê erd û esmanan xuliqandîye û ji bo we ji esman av daxistîye? Bi wê avê me ji bo we bi xweşikbûna dilkêş de bexçeyan hêşîn kirin. Lê hûn nikarin darekê jî hêşîn bikin! Ma bi Allah re îlâhekî din! (Nexêr, ji Allah pê ve qet tu îlâh tune!) Bi rastî ew qewmek in ku (hin heyînan ji Allah re denk digirin û) xerifîne.

**61.** (Ew bixêrtir in an) ew (Allah) ê ku rûyê erdê kiriye wargeh/jîngeh û di navê de çeman xuliqandîye û (ji bo ku nehejin ji çiyan) singan çikandîye û (ji bo ku tevlîhev nebin) asteng xistîye navbera du behran (bixêrtir e)? Ma bi Allah re îlâhekî din! (Nexêr, ji Allah pê ve qet tu îlâh tune!) Bi rastî pirên wan nezan in.

**62.** (Ew bixêrtir in an) ew (Allah) ê îcabetî dûayê wî kesê di tengezarîyê de dike û xerabîyan diborîne û hûn li ser rûyê erdê kiriye xelîfe (bixêrtir e)? Ma bi Allah re îlâhekî din! Ma hûn çi qas hindik şîret digirin.

**63.** (Ew bixêrtir in an) ew (Allah) ê ku di tarîtîyên bej û behrê de rê nîşanî we dide û (berîya baranê ku rahmeta wî ye) wek mizgînvan bayê dişîne (bixêrtir e)? Ma bi Allah re îlâhekî din! Allah, ji tiştên pê şirîkatîyê dikin berztir/bilindtir e.

اَمَّنْ يَبْدَؤُا الْخَلْقَ ثُمَّ يُعِيدُهُ وَمَنْ يَرْزُقُكُمْ مِنَ السَّمَٓاءِ
وَالْاَرْضِۜ ءَاِلٰهٌ مَعَ اللّٰهِۜ قُلْ هَاتُوا بُرْهَانَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿٦٤﴾
قُلْ لَا يَعْلَمُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ الْغَيْبَ اِلَّا اللّٰهُۜ
وَمَا يَشْعُرُونَ اَيَّانَ يُبْعَثُونَ ﴿٦٥﴾ بَلِ ادَّارَكَ عِلْمُهُمْ فِي الْاٰخِرَةِ
بَلْ هُمْ فِي شَكٍّ مِنْهَاۗ بَلْ هُمْ مِنْهَا عَمُونَ ﴿٦٦﴾ وَقَالَ الَّذِينَ كَفَرُٓوا
ءَاِذَا كُنَّا تُرَابًا وَاٰبَٓاؤُنَٓا اَئِنَّا لَمُخْرَجُونَ ﴿٦٧﴾ لَقَدْ وُعِدْنَا هٰذَا
نَحْنُ وَاٰبَٓاؤُنَا مِنْ قَبْلُۙ اِنْ هٰذَٓا اِلَّٓا اَسَاطِيرُ الْاَوَّلِينَ ﴿٦٨﴾ قُلْ سِيرُوا
فِي الْاَرْضِ فَانْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُجْرِمِينَ ﴿٦٩﴾ وَلَا تَحْزَنْ
عَلَيْهِمْ وَلَا تَكُنْ فِي ضَيْقٍ مِمَّا يَمْكُرُونَ ﴿٧٠﴾ وَيَقُولُونَ مَتٰى
هٰذَا الْوَعْدُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿٧١﴾ قُلْ عَسٰٓى اَنْ يَكُونَ
رَدِفَ لَكُمْ بَعْضُ الَّذِي تَسْتَعْجِلُونَ ﴿٧٢﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَذُو فَضْلٍ
عَلَى النَّاسِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَشْكُرُونَ ﴿٧٣﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ
لَيَعْلَمُ مَا تُكِنُّ صُدُورُهُمْ وَمَا يُعْلِنُونَ ﴿٧٤﴾ وَمَا مِنْ غَٓائِبَةٍ
فِي السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِ اِلَّا فِي كِتَابٍ مُبِينٍ ﴿٧٥﴾ اِنَّ هٰذَا الْقُرْاٰنَ
يَقُصُّ عَلٰى بَنِٓي اِسْرَٓائِيلَ اَكْثَرَ الَّذِي هُمْ فِيهِ يَخْتَلِفُونَ ﴿٧٦﴾

**64.** (Ew bixêrtir in an) ew (Allah) ê ku serê pêşîn destpêka xuliqandinê kiriye û paşê (bi vejandinê) wê dubare bike û hûn ji erd û esman dirizqîne (bixêrtir e)? Ma bi Allah re îlâhekî din! Bibêje: "Eger hûn di gotina xwe de rast in, de ka delîlê xwe (yê ku tê de qet tu guman tune) bînin."

**65.** Bibêje: "Li erd û esmanan ji Allah pê ve kesekî din bi xeybê nizane." Haya wan ji dema vejandina wan jî tune.

**66.** Wê agahîya wan li axîretê bicive û qewî bibe. (Wê li wê derê bi yeqînî fêm bikin ku axîret heq e.) Berevajî, ew (îro) di gumanê de ne. Berevajî, li dij wê kor in.

**67.** Kafiran gotin: "Ma dema ku em û bavanên xwe bibin ax û xwelî, erê ma em ê bên vejandin û derxistin?"

**68.** "Sond be em û bavanên me jî bi vêya hatin tehdîd kirin. Ev, bitenê çîrokên berê ne."

**69.** Bibêje: "Li ser rûyê erdê bigerin û bifetilin û binêrin ka aqûbeta gunehkarên mucrîm/sûcdar çawa bûye, bibînin."

**70.** (Her wiha) ji bo wan xemgîn nebe! Ji ber kemînên danîne jî dilê xwe teng neke!

**71.** Dibêjin: "Eger hûn di gotina xwe de rast in, ew (ezab) ê ku we (ji me re) wead dikir kengê ye? (De ka bînin ku em bibînin!)"

**72.** Bibêje: "Ew (ezab) ê hûn ji bo hatina wê dilezînin, dibe ku qismek jê nêzî we bûye."

**73.** Bêguman Rabbê te li ser însanan xwedî lutf û kerem e. Lê pirên însanan şikur nakin.

**74.** Û bêguman Rabbê te bi tiştên ku ew di singê xwe de vedişêrin û eşkere dikin jî dizane.

**75.** Li erd û esmanan her çi tiştê veşartî/nediyar heye, teqez di Kitêbekê de (qeydkirî) ne.

**76.** Bi rastî ev Qur'an; ji Benî Îsraîl re piranîya wan mijarên ku tê de li hev nedikirin de vedibêje (û eşkere dike).

وَاِنَّهُ لَهُدًى وَرَحْمَةٌ لِلْمُؤْمِنِينَ ﴿٧٧﴾ اِنَّ رَبَّكَ يَقْضِي بَيْنَهُمْ
بِحُكْمِهِ وَهُوَ الْعَزِيزُ الْعَلِيمُ ﴿٧٨﴾ فَتَوَكَّلْ عَلَى اللّٰهِ اِنَّكَ
عَلَى الْحَقِّ الْمُبِينِ ﴿٧٩﴾ اِنَّكَ لَا تُسْمِعُ الْمَوْتٰى وَلَا تُسْمِعُ الصُّمَّ
الدُّعَٓاءَ اِذَا وَلَّوْا مُدْبِرِينَ ﴿٨٠﴾ وَمَٓا اَنْتَ بِهَادِي الْعُمْيِ عَنْ ضَلَالَتِهِمْ
اِنْ تُسْمِعُ اِلَّا مَنْ يُؤْمِنُ بِاٰيَاتِنَا فَهُمْ مُسْلِمُونَ ﴿٨١﴾
وَاِذَا وَقَعَ الْقَوْلُ عَلَيْهِمْ اَخْرَجْنَا لَهُمْ دَٓابَّةً مِنَ الْاَرْضِ تُكَلِّمُهُمْ
اَنَّ النَّاسَ كَانُوا بِاٰيَاتِنَا لَا يُوقِنُونَ ﴿٨٢﴾ وَيَوْمَ نَحْشُرُ مِنْ كُلِّ
اُمَّةٍ فَوْجًا مِمَّنْ يُكَذِّبُ بِاٰيَاتِنَا فَهُمْ يُوزَعُونَ ﴿٨٣﴾ حَتّٰٓى اِذَا جَٓاؤُ
قَالَ اَكَذَّبْتُمْ بِاٰيَاتِي وَلَمْ تُحِيطُوا بِهَا عِلْمًا اَمَّاذَا كُنْتُمْ
تَعْمَلُونَ ﴿٨٤﴾ وَوَقَعَ الْقَوْلُ عَلَيْهِمْ بِمَا ظَلَمُوا فَهُمْ لَا يَنْطِقُونَ ﴿٨٥﴾
اَلَمْ يَرَوْا اَنَّا جَعَلْنَا الَّيْلَ لِيَسْكُنُوا فِيهِ وَالنَّهَارَ مُبْصِرًا
اِنَّ فِي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٨٦﴾ وَيَوْمَ يُنْفَخُ فِي الصُّورِ فَفَزِعَ
مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَمَنْ فِي الْاَرْضِ اِلَّا مَنْ شَٓاءَ اللّٰهُ وَكُلٌّ اَتَوْهُ
دَاخِرِينَ ﴿٨٧﴾ وَتَرَى الْجِبَالَ تَحْسَبُهَا جَامِدَةً وَهِيَ تَمُرُّ مَرَّ السَّحَابِ
صُنْعَ اللّٰهِ الَّذِٓي اَتْقَنَ كُلَّ شَيْءٍ اِنَّهُ خَبِيرٌ بِمَا تَفْعَلُونَ ﴿٨٨﴾

**77.** Bêşik ew, ji bo mumînan hîdayet û rahmet e.

**78.** Bêguman Rabbê te, (Roja qiyametê) di navbera wan de wê bi hukmê xwe peyva dawî bibêje. Ew (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**79.** (Her wiha) xwe bispêre Allah! Qet guman tune, tu li ser heqîyeke eşkere yî.

**80.** Bêguman tu nikarî bi (wan kafiran ku dişibin) mirîyan bidî sehkirin. Dema ku ew pişt bidinê û herin, êdî tu dawetê ji wan ên (li dij heqê) ker in re nikarî bidî sehkirin.

**81.** Tu nikarî ew ên kor (li dij heqîyê çavên xwe girtine) jî ji rêşaşîtîyê (xelas bikî û) bigihînî hîdayetê. Tu enceq bi kesên îman bi ayetên me anîne û teslîm bûne re bikaribî (vê dawetê) bidî sehkirin.

**82.** Dema ew ehd/qiyamet hate serê wan (wextê wê nêz bû) em ji wan re ji erdê dabbeyekî (heyînekî derasayî) dertînin. Ji wan re (wiha dibêje:) "Însanan bi ayetên me bi yeqînî nebawer bûn."

("Dabbe" ew tişt e ku dema qiyamet nêz dibe wê ji erdê derkeve û bi însanan re biaxive. Elametekî ji elametên nêzbûna qiyametê ye.)

**83.** Wê roja em ê ji her ummetê civakek (pêşeng) ku ayetên me diderewînin heşir bikin û wê (ber bi cehennemê ve) bêne ajotin.

**84.** Ew, dema ku tên (e hizûrê) wê (Allah) bibêje: "Digel ku we heqîqeta ayetên min fêm nekiribû jî we ew derewandin ha? (De ka hûn bibêjin) we çi amel dikir/we ji bo çi ayetên min înkar dikir?"

**85.** Ji ber zilimkarîya wan qewl/ezab hatîye serê wan û êdî ew nikarin biaxivin.

**86.** Qey nedîtin? Me şev, ji bo ku tê de aramîyê/sekînetê bibînin û roj jî (ji bo şixul û bi dest xistina rizqê wan) ronahî kiriye. Bêguman ji qewmekî mumîn re di vêya de ayet hene.

**87.** Roja ku li sûrê tê pifkirin, ji xeynî ew ên ku Allah daxwaz kiriye pê ve hemû kesên li erd û esmanan ji tirsa dikevin tayê. Û hemû wek sitûxwar/teslîmbûyî tên cem wî.

**88.** Tu dibînî lê tu zen dikî ku çiya di cihê xwe de sekinîne. Ew (çiyan), weke tevgerîna ewran tevdigerin. Hunera wî Allahê ku her tiştî sipûsaxlem çêdike ev e! Bêguman ew ji tiştên ku hûn dikin agahdar e.

مَنْ جَٓاءَ بِالْحَسَنَةِ فَلَهُ خَيْرٌ مِنْهَاۚ وَهُمْ مِنْ فَزَعٍ يَوْمَئِذٍ اٰمِنُونَ ﴿٨٩﴾
وَمَنْ جَٓاءَ بِالسَّيِّئَةِ فَكُبَّتْ وُجُوهُهُمْ فِي النَّارِۜ هَلْ تُجْزَوْنَ
اِلَّا مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٩٠﴾ اِنَّمَٓا اُمِرْتُ اَنْ اَعْبُدَ رَبَّ هٰذِهِ الْبَلْدَةِ
الَّذ۪ي حَرَّمَهَا وَلَهُ كُلُّ شَيْءٍۘ وَاُمِرْتُ اَنْ اَكُونَ مِنَ الْمُسْلِم۪ينَۙ ﴿٩١﴾
وَاَنْ اَتْلُوَا الْقُرْاٰنَۚ فَمَنِ اهْتَدٰى فَاِنَّمَا يَهْتَد۪ي لِنَفْسِه۪ۚ
وَمَنْ ضَلَّ فَقُلْ اِنَّمَٓا اَنَا۬ مِنَ الْمُنْذِر۪ينَ ﴿٩٢﴾ وَقُلِ الْحَمْدُ لِلّٰهِ
سَيُر۪يكُمْ اٰيَاتِه۪ فَتَعْرِفُونَهَاۜ وَمَا رَبُّكَ بِغَافِلٍ عَمَّا تَعْمَلُونَ ﴿٩٣﴾

سُورَةُ الْقَصَصِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانٍ وَثَمَانُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
طٰسٓمٓ ﴿١﴾ تِلْكَ اٰيَاتُ الْكِتَابِ الْمُب۪ينِ ﴿٢﴾ نَتْلُوا عَلَيْكَ مِنْ نَبَاِ مُوسٰى
وَفِرْعَوْنَ بِالْحَقِّ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٣﴾ اِنَّ فِرْعَوْنَ عَلَا فِي الْاَرْضِ
وَجَعَلَ اَهْلَهَا شِيَعًا يَسْتَضْعِفُ طَٓائِفَةً مِنْهُمْ يُذَبِّحُ اَبْنَٓاءَهُمْ
وَيَسْتَحْي۪ نِسَٓاءَهُمْۜ اِنَّهُ كَانَ مِنَ الْمُفْسِد۪ينَ ﴿٤﴾ وَنُر۪يدُ اَنْ نَمُنَّ
عَلَى الَّذ۪ينَ اسْتُضْعِفُوا فِي الْاَرْضِ وَنَجْعَلَهُمْ اَئِمَّةً وَنَجْعَلَهُمُ الْوَارِث۪ينَۙ ﴿٥﴾

**89.** Kî bi qencîyekî were (hizûra Allah), jê re ya herî bixêrtir heye. Û ew ji tirsehêza wê rojê di ewlehîyê de ne.

**90.** Kî jî bi xerabîyekî were (hizûra Allah), ew li ser dev û rû bi agir ve tên avêtin û (parêzvanên agir ji wan re wiha dibêjin:) “Ma hûn ê ji amelên xwe pê ve bi tiştekî din bêne cezakirin?”

**91.** (Bibêje:) “Emir li min hatîye kirin ku ez enceq ji Rabbê vî bajarî (Mekke) re ku wî ev der rûmetdar/pîroz kiriye îbadetê bikim. Û bi vê jî hatime emirkirin ku ez bibim ji evdên muslîm/ew ên şirkê terk kirine û berê xwe bi tewhîdê dane Allah.”

**92.** “Û bi xwendina Qur'anê (hatime emirkirin). Kî bigihîje hîdayetê, ew ji bo xwe gihîştîye hîdayetê. Kî jî xerifîbe (tu wiha) bibêje: ‘Ez bitenê hişyarkerek im.’ ”

**93.** Bibêje: “Hamd ji Allah re ye. Wê ew ê ayetên xwe nîşanî we bide û hûn ê wan (ayetan) nas bikin. Rabbê te ji amelên we ne xafil e.”



## 28. SÛREYA QASAS

*(Sûreya Qasas, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heştê û heşt (88) ayet e)*

*Di Qur’anê de sûreya bîst û heştemîn e. Qasas, tê ser maneya qiseyan. Di ayeta 25. de peyva Qasas dibore. Sûreya Qasas jî navê xwe ji vê peyvê girtîye. Di sûreyê de jiyana Mûsa (as) û qiseya derxistina wî ya ku Benî Îsraîlîyan ji Misrê û xeniqandina Firewn û artêşa wî û qiseya Qarûn tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ta, Sîn, Mîm.

**2.** Ev, ayetên Kitêba mubîn/vikîvekirî ne.

**3.** Em ji bo (talîm û perwerdehîya) qewmekî, qismek ji qiseya Mûsa û Firewn wek heq ji te re dixwînin.

**4.** Qet guman tune ku Firewn, li ser rûyê erdê çavdêrîya serdestîyê kir. Xelkê wê derê kom bi kom ji hevdu veqetandibû û qismek ji wan zeîf/qels dihişt; zaroyên wan ên kurîn serjê dikir û jinên wan sax dihişt. Lewre ew, ji mufsîdan bû.

**5.** Em daxwaz dikin ku li ser rûyê erdê qencîyê bi qelsan (bi mustezefan) bikin û wan bikin rêber (ên peyrevîtî li wan tên kirin) û wan (li ser rûyê erdê) bikin waris.

(Firewnan; li ser sparteka nîjad/irq û sewîya dahatê û payeciha civakî û komên meslekan civakê herûdaîm ji hevdu parîparî dikin. Civak çi qasî ji hevdu parî bibin, ew qas jî dibin dijminên hev û qelstir dibin. Ferdên civaka parvebûyî û lihevketî û bendbendî bûyî ji bo ewlehî û aramîyê li xelaskerekî digerin. Di vê rewşê de ew xelasker jî Firewn e... Allah (ac) jî vê daxwazê dike ku hemû însan li ser aqîda tewhîdê bicivin û bi sibxeta/bi boyaxa îslâmê bên boyaxkirin û ji temamê nasnameyên nejidil/nasnameyên sunî azad bibin û îslâm wek nasnameya xwe ya eslî bipejirînin. (Allah) dixwaze ku ew civakên ku di vê mijarê de bi ser ketine, bi aqîda tewhîdê û bi exlaqa edaletê bibin rêber û warisên ser rûyê erdê.)

وَنُمَكِّنَ لَهُمْ فِي الْاَرْضِ وَنُرِيَ فِرْعَوْنَ وَهَامَانَ
وَجُنُودَهُمَا مِنْهُمْ مَا كَانُوا يَحْذَرُونَ ٦ وَاَوْحَيْنَا اِلٰى اُمِّ
مُوسٰى اَنْ اَرْضِعِيهِ فَاِذَا خِفْتِ عَلَيْهِ فَاَلْقِيهِ فِي الْيَمِّ
وَلَا تَخَافِي وَلَا تَحْزَنِي اِنَّا رَادُّوهُ اِلَيْكِ وَجَاعِلُوهُ مِنَ الْمُرْسَلِينَ ٧
فَالْتَقَطَهُ اٰلُ فِرْعَوْنَ لِيَكُونَ لَهُمْ عَدُوًّا وَحَزَنًا
اِنَّ فِرْعَوْنَ وَهَامَانَ وَجُنُودَهُمَا كَانُوا خَاطِئِينَ ٨
وَقَالَتِ امْرَاَتُ فِرْعَوْنَ قُرَّتُ عَيْنٍ لِي وَلَكَ لَا تَقْتُلُوهُ
عَسٰى اَنْ يَنْفَعَنَا اَوْ نَتَّخِذَهُ وَلَدًا وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ٩
وَاَصْبَحَ فُؤَادُ اُمِّ مُوسٰى فَارِغًا اِنْ كَادَتْ لَتُبْدِي بِهِ لَوْلَا
اَنْ رَبَطْنَا عَلٰى قَلْبِهَا لِتَكُونَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ ١٠ وَقَالَتْ
لِاُخْتِهِ قُصِّيهِ فَبَصُرَتْ بِهِ عَنْ جُنُبٍ وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ١١
وَحَرَّمْنَا عَلَيْهِ الْمَرَاضِعَ مِنْ قَبْلُ فَقَالَتْ هَلْ اَدُلُّكُمْ
عَلٰى اَهْلِ بَيْتٍ يَكْفُلُونَهُ لَكُمْ وَهُمْ لَهُ نَاصِحُونَ ١٢
فَرَدَدْنَاهُ اِلٰى اُمِّهِ كَيْ تَقَرَّ عَيْنُهَا وَلَا تَحْزَنَ وَلِتَعْلَمَ اَنَّ
وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ١٣

**6.** Û em (dixwazin) wan li ser rûyê erdê bikin xwedî hêz/desthilatdar. Tiştên ku xwe jê diparastin em (dixwazin) nîşanî Firewn û Haman û leşkerên wan bidin.

**7.** Me ji dêya Mûsa re wiha wehîy kir: “Wî şîr bide. Eger tu (ji Firewn û leşkerên wî) bitirsî, wî berde behrê. Netirse, xemgîn nebe! Bêguman em ê wî dîsa li te vegerînin û em ê wî bikin ji pêxemberên şandî.”




**8.** Firewn û malbata wî ew (bebek) a (di pêş de) ji wan re neyartî bike û bibe sebebê xemgînîyê girtin/xwedîtî lê kirin. Bêşik Firewn û Haman û leşkerên herduyan di xeletîyê de bûn.

(Li îndallah/li cem Allah; qet tu ferqa wan kes an pergalên Firewnî û yên dibin alîkarê wan û meşrûîyetê didin wan û wan li pîya dihêlin tune. Ji ber vê yekê Allah (ac) xeletîyê ne bitenê nisbetê Firewn dike, ligel wî fermandar û wezîr û artêşên ji leşkerên ji rêzê ku bi qelsî hatine kolekirin pêk hatî jî yanê wê xeletîyê nisbetê li hemû kesên li derdora wî kiriye. Hemûyan bi hev re helak kiriye (28/Qasas, 40-42) û qedal bi wan anîye (11/Hûd, 97-99).)

**9.** Jina Firewn got: “Ev (zarokek e ku) ji bo min û te ronahîya çavan e. Wî nekujin. Dibe ku feydeyekî wî bigihîje me an jî em ê wî ji xwe re wek kurmarî bigirin.” Lê haya wan (ji tiştê ku bê serê wan) tune bû.

**10.** Dêya Mûsa bi dilxemî (ji ber ku endişe dikir bitenê bi fikara Mûsa bi bê hişî) gihîşte sibê. Eger ji bo ku bibe ji mumînan me qelbê wê qewî nekiriba hindik mabû ku wê ew (sirra Mûsa) eşkere bikira.

**11.** Ji xwişka wî (Mûsa) re got: “Wî bişopîne.” Bi vî awayî haya tu kesî jê tunebû ku wê ji rexekê ve ew dişopand.

**12.** Di berê de (berîya ku em wî (Mûsa) li dêya wî vegerînin) me dêşîran jê re heram kiribû. (Şîrê tu kesekê nedivexwar.) Xwişka wî got: “Ma ez maleke ku wî xweş xwedî bikin û ew lê guhdar bin nîşanî we bidim?”

**13.** Herwiha ji bo ku çavê wê ronahî/dilê wê xweş bibe û bila bizanibe ku weada Allah heq e, me ew (Mûsa) li dêya wî vegerand. Lê pirên wan nizanin.

وَلَمَّا بَلَغَ اَشُدَّهُ وَاسْتَوٰٓى اٰتَيْنَاهُ حُكْمًا وَعِلْمًاۜ وَكَذٰلِكَ
نَجْزِى الْمُحْسِنِينَ ﴿١٤﴾ وَدَخَلَ الْمَدِينَةَ عَلٰى حِينِ غَفْلَةٍ مِنْ اَهْلِهَا
فَوَجَدَ فِيهَا رَجُلَيْنِ يَقْتَتِلَانِۘ هٰذَا مِنْ شِيعَتِهِ وَهٰذَا مِنْ عَدُوِّهِۚ
فَاسْتَغَاثَهُ الَّذِى مِنْ شِيعَتِهِ عَلَى الَّذِى مِنْ عَدُوِّهِۙ فَوَكَزَهُ مُوسٰى
فَقَضٰى عَلَيْهِۘ قَالَ هٰذَا مِنْ عَمَلِ الشَّيْطَانِۜ اِنَّهُ عَدُوٌّ مُضِلٌّ مُبِينٌ ﴿١٥﴾
قَالَ رَبِّ اِنِّى ظَلَمْتُ نَفْسِى فَاغْفِرْ لِى فَغَفَرَ لَهُۜ اِنَّهُ هُوَ الْغَفُورُ
الرَّحِيمُ ﴿١٦﴾ قَالَ رَبِّ بِمَٓا اَنْعَمْتَ عَلَىَّ فَلَنْ اَكُونَ ظَهِيرًا
لِلْمُجْرِمِينَ ﴿١٧﴾ فَاَصْبَحَ فِى الْمَدِينَةِ خَٓائِفًا يَتَرَقَّبُ فَاِذَا الَّذِى
اسْتَنْصَرَهُ بِالْاَمْسِ يَسْتَصْرِخُهُۜ قَالَ لَهُ مُوسٰٓى اِنَّكَ لَغَوِىٌّ مُبِينٌ ﴿١٨﴾
فَلَمَّٓا اَنْ اَرَادَ اَنْ يَبْطِشَ بِالَّذِى هُوَ عَدُوٌّ لَهُمَاۙ قَالَ يَا مُوسٰٓى اَتُرِيدُ
اَنْ تَقْتُلَنِى كَمَا قَتَلْتَ نَفْسًا بِالْاَمْسِۗ اِنْ تُرِيدُ اِلَّٓا اَنْ تَكُونَ
جَبَّارًا فِى الْاَرْضِ وَمَا تُرِيدُ اَنْ تَكُونَ مِنَ الْمُصْلِحِينَ ﴿١٩﴾
وَجَٓاءَ رَجُلٌ مِنْ اَقْصَا الْمَدِينَةِ يَسْعٰىۘ قَالَ يَا مُوسٰٓى اِنَّ الْمَلَاَ
يَاْتَمِرُونَ بِكَ لِيَقْتُلُوكَ فَاخْرُجْ اِنِّى لَكَ مِنَ النَّاصِحِينَ ﴿٢٠﴾
فَخَرَجَ مِنْهَا خَٓائِفًا يَتَرَقَّبُۘ قَالَ رَبِّ نَجِّنِى مِنَ الْقَوْمِ الظَّالِمِينَۚ ﴿٢١﴾

**14.** Dema gihaştibû û giha kemala xwe, me hukim û ilim dayê. Em muhsînan/ew ên ku evdîtîya xwe herî xweşik pêk tînin wiha xelat dikin.

**15.** Di demekî de haya xelkê wê derê jê tunebû Mûsa ket nava bajêr. Li wê derê dît ku du zilam li hev dixin. Yek ji qewmê wî bû û yê din jî ji neyarên wî bû. Ew ê ji qewmê wî li dij wî (ji Mûsa) alîkarî xwest. Mûsa jî kulmek lê da û ew kuşt. Got: "Ev, ji karê şeytan e. Bêguman ew neyarekî rêşaşkerê vikîvekirî ye.

**16.** Got: "Rabbê min, min zilim li nefsa xwe kir. Min efû bike." (Allah jî) ew efû kir. Lewre ew, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**17.** Got: "Rabbê min! Ji ber wê nîmeta (efûkirinê) ku te daye min êdî ez nabim alîkarê gunehkarên mucrîm/sûcdar."

**18.** (Ji ber wê qetla ku kiribû) di bajêr de bi çavdêrîyeke bi tirs lê bû sibeh. (Bi carekî çi bibîne!) Ew kesê ku duh jê alîkarî dixwest, (dîsa) gazî wî dike û alîkarî dixwaze. Mûsa jê re got: "Tu bi eşkerehî mirovekî har î/bitir î."

**19.** Çi dema xwest wî zilamê ku dijminê her duyan bû bigire, ji Mûsa re wiha got: "Ya Mûsa! Wekî ku te duh yekî kuştibû tu dixwazî îro jî min bikujî? Tu dixwazî li ser rûyê erdê bibî zordar, naxwazî bibî ji muslîhan/ji islahkeran."

**20.** Axir ji rexê bajêr ya din zilamek bi bezdan hat. Got: "Ya Mûsa! Giregiran ji bo kuştina te civînekî danîne. Ji vê derê derkeve. (Ji bo ku qencîya te dixwazim, ez) şîret li te dikim."

**21.** Ji wê derê bi tirs û bi çavdêrîya derdor derket. Got: "Rabbê min, tu min ji qewmê zaliman xelas bike."

وَلَمَّا تَوَجَّهَ تِلْقَٓاءَ مَدْيَنَ قَالَ عَسٰى رَبّ۪ٓي اَنْ يَهْدِيَن۪ي
سَوَٓاءَ السَّب۪يلِ ﴿٢٢﴾ وَلَمَّا وَرَدَ مَٓاءَ مَدْيَنَ وَجَدَ عَلَيْهِ اُمَّةً
مِنَ النَّاسِ يَسْقُونَۘ وَوَجَدَ مِنْ دُونِهِمُ امْرَاَتَيْنِ تَذُودَانِۚ
قَالَ مَا خَطْبُكُمَاۜ قَالَتَا لَا نَسْق۪ي حَتّٰى يُصْدِرَ الرِّعَٓاءُ وَاَبُونَا
شَيْخٌ كَب۪يرٌ ﴿٢٣﴾ فَسَقٰى لَهُمَا ثُمَّ تَوَلّٰٓى اِلَى الظِّلِّ فَقَالَ رَبِّ
اِنّ۪ي لِمَٓا اَنْزَلْتَ اِلَيَّ مِنْ خَيْرٍ فَق۪يرٌ ﴿٢٤﴾ فَجَٓاءَتْهُ اِحْدٰيهُمَا
تَمْش۪ي عَلَى اسْتِحْيَٓاءٍۘ قَالَتْ اِنَّ اَب۪ي يَدْعُوكَ لِيَجْزِيَكَ اَجْرَ
مَا سَقَيْتَ لَنَاۜ فَلَمَّا جَٓاءَهُ وَقَصَّ عَلَيْهِ الْقَصَصَۙ قَالَ لَا تَخَفْ
نَجَوْتَ مِنَ الْقَوْمِ الظَّالِم۪ينَ ﴿٢٥﴾ قَالَتْ اِحْدٰيهُمَا يَٓا اَبَتِ
اسْتَأْجِرْهُۘ اِنَّ خَيْرَ مَنِ اسْتَأْجَرْتَ الْقَوِيُّ الْاَم۪ينُ ﴿٢٦﴾
قَالَ اِنّ۪ٓي اُر۪يدُ اَنْ اُنْكِحَكَ اِحْدَى ابْنَتَيَّ هَاتَيْنِ
عَلٰٓى اَنْ تَأْجُرَن۪ي ثَمَانِيَ حِجَجٍۚ فَاِنْ اَتْمَمْتَ عَشْرًا فَمِنْ عِنْدِكَۚ
وَمَٓا اُر۪يدُ اَنْ اَشُقَّ عَلَيْكَۜ سَتَجِدُن۪ٓي اِنْ شَٓاءَ اللّٰهُ
مِنَ الصَّالِح۪ينَ ﴿٢٧﴾ قَالَ ذٰلِكَ بَيْن۪ي وَبَيْنَكَۜ اَيَّمَا الْاَجَلَيْنِ
قَضَيْتُ فَلَا عُدْوَانَ عَلَيَّۜ وَاللّٰهُ عَلٰى مَا نَقُولُ وَك۪يلٌ ﴿٢٨﴾

**22.** Dema berê xwe da bi Medyenê ve got: “Hêvî heye ku Rabbê min bigihîne rêya rasterast.”

**23.** Wextê gihîşt ser ava Medyenê, li ser avê komek însan dît ku wan heywanên xwe av didan. Ji xeynî wan du heb jî jin dît (ji bo heywanên wan tevlî ên din nebin) ji wan re dibûn asteng. Ji wan re got: “Ev çi rewşa we ye? (Hûn çima kerîyê xwe av nadin?)” Gotin: “Heta ew (şivanên din) kerîyên xwe nedin em nikarin av bidin. (Eger tu pirsa wî dikî) bavê me jî pîremêr e/ixtîyar e.”

**24.** Ji bo wan kerîyê wan av da. Paşê hilkişîya bin siheke û wiha got: “Rabbê min! Ez hewcedarê her cureya xêrê me ku tu ji min re daxînî.”

**25.** Ji wan herduyan yek, bi meşeke (bi edeb û) bi heya hate cem (Mûsa û) got: “Bavê min ji ber wê (qencî) ya avdanê ku te bi me re kiriye heqê te bide, gazî te dike.” Dema (Mûsa çû) cem bavê wan û serpêhatîyên xwe jê re qise kir, (wî jî) got: “Netirse! Tu ji qewmekî zilimkar xelas bûyî.”

**26.** Ji wan herduyan yekê wiha got: “Bavê min! Wî wek karker biheq bigire. Bixêrtirê karkerên ku tu bigirî, yê herî bi hêz û ewledar e.”

**27.** (Bavê wan) got: “Di muqabilê ku tu heşt salan ji min re wek karker bixebitî ez dixwazim ji van her du keçên xwe yekê li te mahr bikim. Eger tu deh salan temam bikî, ew jî qencîyekî ji te ye. Ez naxwazim zorahîyê ji te re derêxim. Înşaallah wê tu bibînî ku ez ji salihan im.”

**28.** (Mûsa) got: “Ev (peymaneke) di navbera min û te de ye. Ji van herdu qewlan kîjanî temam bikim êdî ji min re neyartî tune/ji min ne enire. Allah li ser van gotinên me wekîl e.”

فَلَمَّا قَضٰى مُوسَى الْاَجَلَ وَسَارَ بِاَهْلِهٖٓ اٰنَسَ مِنْ جَانِبِ
الطُّورِ نَارًاۚ قَالَ لِاَهْلِهِ امْكُثُوٓا اِنّٖٓي اٰنَسْتُ نَارًا
لَعَلّٖٓي اٰتٖيكُمْ مِنْهَا بِخَبَرٍ اَوْ جَذْوَةٍ مِنَ النَّارِ لَعَلَّكُمْ
تَصْطَلُونَ ﴿٢٩﴾ فَلَمَّآ اَتٰيهَا نُودِيَ مِنْ شَاطِـئِ الْوَادِ الْاَيْمَنِ
فِي الْبُقْعَةِ الْمُبَارَكَةِ مِنَ الشَّجَرَةِ اَنْ يَا مُوسٰٓى اِنّٖٓي اَنَا اللّٰهُ
رَبُّ الْعَالَمٖينَۙ ﴿٣٠﴾ وَاَنْ اَلْقِ عَصَاكَۜ فَلَمَّا رَاٰهَا تَهْتَزُّ كَاَنَّهَا
جَآنٌّ وَلّٰى مُدْبِرًا وَلَمْ يُعَقِّبْۜ يَا مُوسٰٓى اَقْبِلْ وَلَا تَخَفْ
اِنَّكَ مِنَ الْاٰمِنٖينَ ﴿٣١﴾ اُسْلُكْ يَدَكَ فٖي جَيْبِكَ تَخْرُجْ بَيْضَٓاءَ
مِنْ غَيْرِ سُوٓءٍۘ وَاضْمُمْ اِلَيْكَ جَنَاحَكَ مِنَ الرَّهْبِ فَذَانِكَ
بُرْهَانَانِ مِنْ رَبِّكَ اِلٰى فِرْعَوْنَ وَمَلَا۬ئِهٖۜ اِنَّهُمْ كَانُوا
قَوْمًا فَاسِقٖينَ ﴿٣٢﴾ قَالَ رَبِّ اِنّٖي قَتَلْتُ مِنْهُمْ نَفْسًا فَاَخَافُ
اَنْ يَقْتُلُونِ ﴿٣٣﴾ وَاَخٖي هٰرُونُ هُوَ اَفْصَحُ مِنّٖي لِسَانًا فَاَرْسِلْهُ مَعِيَ
رِدْءًا يُصَدِّقُنٖيۘ اِنّٖٓي اَخَافُ اَنْ يُكَذِّبُونِ ﴿٣٤﴾ قَالَ سَنَشُدُّ
عَضُدَكَ بِاَخٖيكَ وَنَجْعَلُ لَكُمَا سُلْطَانًا فَلَا يَصِلُونَ
اِلَيْكُمَا بِاٰيَاتِنَاۚ اَنْتُمَا وَمَنِ اتَّبَعَكُمَا الْغَالِبُونَ ﴿٣٥﴾

**29.** Çaxê Mûsa qewlê xwe temam kir û bi malbata xwe re bi rê ket, li alîyê Tûr agirek dît. Ji ehlê xwe re got: “Hûn li vê derê bisekinin. Lewre min agirek dît. Dibe ku ez ji we re agahîyekî an jî bizotekî agir bînim.”

**30.** Dema hat (cem agir), ji alîyê rastê yê newala pîroz de ji darekê wiha lê hate gazîkirin: “Ya Mûsa! Bêşik ez (belê, ez) Allahê Rabbê aleman im.”

**31.** “Gopalê xwe bavêje!” (Gopalê xwe avêt.) Dema dît ku weke marekî dilive/tevdigere, li pişt xwe mêze nekir û dest bi revê kir. “Ya Mûsa! Vegere û netirse! Lewre tu ji yên emîn/ewledar î.”

**32.** Destê xwe têxe paşila xwe. Wê bi spîtîyekî bê xerabûn/bê nexweşî derkeve. Milên xwe (yên ji ber tirsê vebûne) ber bi xwe ve bikişîne (wê tirsa te bibore). Ev her du (gopal û destê spî) ji Rabbê te ji bo Firewn û ji bo giregirên wî du heb delîl in (ku di van de qet tu guman tunin). Bêguman ew, qewmekî fasiq in.”

**33.** Got: “Rabbê min, min mirovek ji wan kuştibû. (Ji ber vê yekê) ez ditirsim ku min bikujin.”

**34.** “Birayê min Hârûn, ji min çêtir diaxive/zimanê wî fesihtir e. Wî jî wek alîkar bi min re bişîne da ku ew min birastîne. Lewre ez ditirsim ku ew min biderewînin.”

**35.** Got: “Em ê hêza te/bazûya te bi piştgirîya birayê te qayîm û xurt bikin. Em ê hûccetekî wisan bidin we ku; ji ber ayetên/mucîzeyên me wê nikaribin têkilî we bibin/zerarê bidin we. Hûn û yên ku li pey we tên (herûdaîm) wê bi ser bikevin.”

فَلَمَّا جَٓاءَهُمْ مُوسٰى بِاٰيَاتِنَا بَيِّنَاتٍ قَالُوا مَا هٰذَٓا اِلَّا سِحْرٌ
مُفْتَرًى وَمَا سَمِعْنَا بِهٰذَا فٖٓي اٰبَٓائِنَا الْاَوَّلٖينَ ﴿٣٦﴾ وَقَالَ
مُوسٰى رَبّٖٓي اَعْلَمُ بِمَنْ جَٓاءَ بِالْهُدٰى مِنْ عِنْدِهٖ
وَمَنْ تَكُونُ لَهُ عَاقِبَةُ الدَّارِۜ اِنَّهُ لَا يُفْلِحُ الظَّالِمُونَ ﴿٣٧﴾
وَقَالَ فِرْعَوْنُ يَٓا اَيُّهَا الْمَلَاُ مَا عَلِمْتُ لَكُمْ
مِنْ اِلٰهٍ غَيْرٖيۚ فَاَوْقِدْ لٖي يَا هَامَانُ عَلَى الطّٖينِ فَاجْعَلْ
لٖي صَرْحًا لَعَلّٖٓي اَطَّلِعُ اِلٰٓى اِلٰهِ مُوسٰىۙ وَاِنّٖي لَاَظُنُّهُ
مِنَ الْكَاذِبٖينَ ﴿٣٨﴾ وَاسْتَكْبَرَ هُوَ وَجُنُودُهُ فِي الْاَرْضِ
بِغَيْرِ الْحَقِّ وَظَنُّٓوا اَنَّهُمْ اِلَيْنَا لَا يُرْجَعُونَ ﴿٣٩﴾
فَاَخَذْنَاهُ وَجُنُودَهُ فَنَبَذْنَاهُمْ فِي الْيَمِّۚ فَانْظُرْ كَيْفَ
كَانَ عَاقِبَةُ الظَّالِمٖينَ ﴿٤٠﴾ وَجَعَلْنَاهُمْ اَئِمَّةً يَدْعُونَ اِلَى النَّارِۚ
وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِ لَا يُنْصَرُونَ ﴿٤١﴾ وَاَتْبَعْنَاهُمْ فٖي هٰذِهِ الدُّنْيَا
لَعْنَةًۚ وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِ هُمْ مِنَ الْمَقْبُوحٖينَ ﴿٤٢﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا
مُوسَى الْكِتَابَ مِنْ بَعْدِ مَٓا اَهْلَكْنَا الْقُرُونَ الْاُولٰى
بَصَٓائِرَ لِلنَّاسِ وَهُدًى وَرَحْمَةً لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ ﴿٤٣﴾

**36.** Dema Mûsa bi ayetên me yên eşkere ji wan re hat, gotin: “Ev, ji sêhra lihevanînî pê ve ne tiştekî din e. Me tiştekî wiha ji bav û kalên xwe yên pêşîn nebihîstîye.”

**37.** Mûsa got: “Rabbê min çêtir dizane ka kî ji cem wî bi hîdayetê hatîye û aqubeta (xweşik) ka ji kî re ye. Muheqeq ew ên zilimkar nagihêjin xelasîyê.”

**38.** Firewn got: “Gelî giregiran! Ez ji bo we ji xwe pê ve îlâhekî din nas nakim. Ya Haman! Rabe li ser herîyê ji bo min agir pêxe û ji min re bircekî ava bike. Hêvî dikim ku ez (derkevim ser û) xwe bigihînim îlâhê Mûsa! Lewre ez bawer im ku ew teqez ji derewkaran e.”

**39.** Ew û leşkerên xwe li ser rûyê erdê bi neheqî quretîyê kirin. Û ji wan we ye ku wê li me nevegerin.

**40.** Me jî ew û leşkerên wî girt û avêtin behrê. Tu binêre ka aqubeta zaliman çawa bûye!

**41.** Me ew kirin ji wan rehberan/serokan ku wan gazî agir dikin. Wê roja qiyametê jî alîkarî li wan neyê kirin.

**42.** Me li dinyayê lanet xiste dû wan. (Kesên mumîn çiqas wan bi bîr bînin lanetê li wan dikin û) roja qiyametê jî (li rûyên wan nayê mêzandin û di rewşeke kerixî de) kirêtkirî ne.

**43.** Sond be piştî ku me neslên ewwil helak kirin, me ji însanan re Kitêbeke dûrebînan/besîretan dihewîne û hîdayet û rahmet e da Mûsa. Hêvî heye ku şîret bigirin.

وَمَا كُنْتَ بِجَانِبِ الْغَرْبِيِّ اِذْ قَضَيْنَٓا اِلٰى مُوسَى الْاَمْرَ
وَمَا كُنْتَ مِنَ الشَّاهِدِينَۙ ﴿٤٤﴾ وَلٰكِنَّٓا اَنْشَاْنَا قُرُونًا
فَتَطَاوَلَ عَلَيْهِمُ الْعُمُرُۚ وَمَا كُنْتَ ثَاوِيًا فٖٓي اَهْلِ مَدْيَنَ
تَتْلُوا عَلَيْهِمْ اٰيَاتِنَاۙ وَلٰكِنَّا كُنَّا مُرْسِلٖينَ ﴿٤٥﴾ وَمَا كُنْتَ
بِجَانِبِ الطُّورِ اِذْ نَادَيْنَا وَلٰكِنْ رَحْمَةً مِنْ رَبِّكَ لِتُنْذِرَ
قَوْمًا مَٓا اَتٰيهُمْ مِنْ نَذٖيرٍ مِنْ قَبْلِكَ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ ﴿٤٦﴾
وَلَوْلَٓا اَنْ تُصٖيبَهُمْ مُصٖيبَةٌ بِمَا قَدَّمَتْ اَيْدٖيهِمْ فَيَقُولُوا رَبَّنَا
لَوْلَٓا اَرْسَلْتَ اِلَيْنَا رَسُولًا فَنَتَّبِعَ اٰيَاتِكَ وَنَكُونَ مِنَ الْمُؤْمِنٖينَ ﴿٤٧﴾
فَلَمَّا جَٓاءَهُمُ الْحَقُّ مِنْ عِنْدِنَا قَالُوا لَوْلَٓا اُو۫تِيَ مِثْلَ
مَٓا اُو۫تِيَ مُوسٰىۜ اَوَلَمْ يَكْفُرُوا بِمَٓا اُو۫تِيَ مُوسٰى مِنْ قَبْلُۚ
قَالُوا سِحْرَانِ تَظَاهَرَاࣞ وَقَالُوٓا اِنَّا بِكُلٍّ كَافِرُونَ ﴿٤٨﴾
قُلْ فَاْتُوا بِكِتَابٍ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ هُوَ اَهْدٰى مِنْهُمَٓا اَتَّبِعْهُ
اِنْ كُنْتُمْ صَادِقٖينَ ﴿٤٩﴾ فَاِنْ لَمْ يَسْتَجٖيبُوا لَكَ فَاعْلَمْ
اَنَّمَا يَتَّبِعُونَ اَهْوَٓاءَهُمْۜ وَمَنْ اَضَلُّ مِمَّنِ اتَّبَعَ هَوٰيهُ بِغَيْرِ
هُدًى مِنَ اللّٰهِۜ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الظَّالِمٖينَ ﴿٥٠﴾

**44.** Dema me (wezîfeya pêxemberîyê dayê û) me kar/îş qedand, (tu) ne li alîyê rojavayê (Çiyayê Tûr) bûyî; (herwiha) tu ne ji şahidan jî bûyî.

**45.** Lê me gelek neslan heyî kir û di ser wan de gelek ûmrê dirêj bihûrî. Tu di nava xelkê Medyenê de nebûyî û te ji wan re ayetên me jî nedixwend. Lê belê me (pêxemberan) dişandin.

**46.** Dema ku me gazî (Mûsa) kir jî tu ne li cem Tûr bûyî. Lê bi rahmeteke Rabbê te (em van ji te re wehîy dikin ku) qewmê berî te ku qet hişyarker ji wan re nehatine tu wan hişyar bikî. Hêvî heye ku şîret bigirin.

(Ev ayet, diyar dike ku berîya Rasûlullah (ass) ji ehlê Mekkeyê re hişyarker nehatine. (Bnr. 36/Yâsîn, 6) Digel ku di mijara şirkê de nehatine hişyarkirin jî Allah (ac) wan wek muşrîk bi nav kiriye (98/Beyyîne, 1) û Rasûlullah (ass) bi wan daye zanîn ku mirîyên wan di agir de ne. Lewre di mijara tewhîd û şirkê de, li ser evdên wî pênc heb delîlên Allah (ac) hene ku her yek ji wan huccetekî musteqîl e.

a. Allah (ac) ji evdên xwe ehd sitendîye û di roja qiyametê de pêşî ji van gotinên wekî "Nizanibûm" an "Ez muqellîd bûm" girtîye. (Bnr. 7/A'raf, 172-173)

b. Însanan li ser fitreta tewhîdê xuliqandîye. (Bnr. 30/Rûm, 30)

c. Pêxemberan şandîye (Bnr. 4/Nîsa, 165)

d. Kitêban nazil kiriye. (Bnr. 6/En'am, 19; 11/Hûd, 1-2)

e. Li ser hebûn û yekîtîya wî, delîlên bêjimar di vê gerdûnê/kaînatê de bi cih kiriye. (Bnr. 2/Baqara, 163-164; 6/En'am, 94-102; 27/Neml, 59-65)

Digel hebûn û eşkerehîya van delîlan Allah (ac) berîya ku pêxember bişîne, tu qewmî bi tevahî helak nake. Ayeta pişt vê re tê jî vê heqîqetê rave dike.)

**47.** Eger dema ji ber tişt (amel) ên teqdîm kirine musîbetek tê serê wan wiha negotibana: "Rabbê me! Te ji me re pêxemberek bişandiba da ku me bida pey ayetên te û em bibûna ji mumînan." (Berîya ku em ji wan re pêxember bişînin me yê wan ceza bikirana).

**48.** Çaxê ji cem me ji wan (ehlê Mekkeyê) re heqî (ya me şandî) hat, gotin: "De bila (mucîze) ya ji Mûsa re hatibû, ji wî re jî bihatiba dayîn?" Ma ne ew bûn ku berê de ya ji Mûsa re hatibû dayîn jî înkar kiribûn? Gotibûn: "Du sêhrên ku pişt-evanê hevdû ne!" û gotin: "Bêşik, em hemûyan înkar dikin."

**49.** Bibêje: "Eger hûn rastbêj in, ji îndallah Kitêbekê ku ji herduyan (ji Tewrat û Qur'anê) herî rasttir bînin da ku ez jî bidim pey wê!"

**50.** Eger ew bersivê nedin te bizanibe ku; ew didin pey hewayên/hewesên xwe. Qey ji wî kesî kî rêşaştir e ku beyî hîdayetekî/spartekekî dide pey hewayê xwe? Bêguman Allah qewmê zilimkar hîdayet nake.

وَلَقَدْ وَصَّلْنَا لَهُمُ الْقَوْلَ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَۜ ﴿٥١﴾ اَلَّذِينَ
اٰتَيْنَاهُمُ الْكِتَابَ مِنْ قَبْلِهِ هُمْ بِهِ يُؤْمِنُونَ ﴿٥٢﴾ وَاِذَا يُتْلٰى
عَلَيْهِمْ قَالُٓوا اٰمَنَّا بِهٖٓ اِنَّهُ الْحَقُّ مِنْ رَبِّنَٓا اِنَّا كُنَّا مِنْ قَبْلِهٖ
مُسْلِمِينَ ﴿٥٣﴾ اُولٰٓئِكَ يُؤْتَوْنَ اَجْرَهُمْ مَرَّتَيْنِ بِمَا صَبَرُوا وَيَدْرَؤُنَ
بِالْحَسَنَةِ السَّيِّئَةَ وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ يُنْفِقُونَ ﴿٥٤﴾ وَاِذَا سَمِعُوا
اللَّغْوَ اَعْرَضُوا عَنْهُ وَقَالُوا لَنَٓا اَعْمَالُنَا وَلَكُمْ اَعْمَالُكُمْۘ
سَلَامٌ عَلَيْكُمْۘ لَا نَبْتَغِي الْجَاهِلِينَ ﴿٥٥﴾ اِنَّكَ لَا تَهْدِي
مَنْ اَحْبَبْتَ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ يَهْدِي مَنْ يَشَٓاءُۚ وَهُوَ اَعْلَمُ بِالْمُهْتَدِينَ ﴿٥٦﴾
وَقَالُٓوا اِنْ نَتَّبِعِ الْهُدٰى مَعَكَ نُتَخَطَّفْ مِنْ اَرْضِنَاۜ
اَوَلَمْ نُمَكِّنْ لَهُمْ حَرَمًا اٰمِنًا يُجْبٰٓى اِلَيْهِ ثَمَرَاتُ كُلِّ شَيْءٍ رِزْقًا
مِنْ لَدُنَّا وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٥٧﴾ وَكَمْ اَهْلَكْنَا
مِنْ قَرْيَةٍ بَطِرَتْ مَعِيشَتَهَاۚ فَتِلْكَ مَسَاكِنُهُمْ لَمْ تُسْكَنْ
مِنْ بَعْدِهِمْ اِلَّا قَلِيلًاۜ وَكُنَّا نَحْنُ الْوَارِثِينَ ﴿٥٨﴾ وَمَا كَانَ رَبُّكَ
مُهْلِكَ الْقُرٰى حَتّٰى يَبْعَثَ فٖٓي اُمِّهَا رَسُولًا يَتْلُوا عَلَيْهِمْ
اٰيَاتِنَاۚ وَمَا كُنَّا مُهْلِكِي الْقُرٰٓى اِلَّا وَاَهْلُهَا ظَالِمُونَ ﴿٥٩﴾




**51.** Sond be ji bo ku şîret bigirin me peyv, bênavber ragihande wan.

**52.** Ew ên berî (vê Qur'anê) me Kitêb dabû wan bawerî bi vê (Qur'anê) tînin.

**53.** Dema ku (ayetên wê) ji wan re tê xwendin wiha dibêjin: "Me îman pê anî. Bêguman ew, heqeke ji Rabbê me (hatî) ye. Bêşik em di berê de jî muslîm bûn/ew evdên ku şirkê terk kirine û berê xwe bi tewhîdê dane Allah bûn."

**54.** Evana ew kes in ku ji ber sebirkirina xwe wê du caran mukâfatên xwe bistînin. Xerabîyê bi qencîyê diqewirînin û ji rizqê ku me daye wan înfaq dikin.

**55.** Wextê ku tiştekî vala/bêxaye/bêfeyde dibihîzin jê rû vedigerînin û wiha dibêjin: "Amelên me ji me re û amelên we jî ji we re ye. Silav li ser we be, em naxwazin bibin ji cahilan."

**56.** Tu nikarî hezkirîyê xwe bigihînî hîdayetê, lê Allah kî bivê wî tîne ser hîdayetê. Ew herî çêtir dizane ka kî ji hîdayetê ra0 (lêhatî) ye.

**57.** Gotin: "Eger em bi te re bidin dû hîdayetê, em ê ji cih û warê xwe bêne derxistin." Ma qey me ew li cihekî Harem (bi rûmet) û ewledar bi cih nekiribû ku ji kerema me ji her cihî fêkîyên her tiştî wek riziq ji wan re dihat civandin? Lê pirên wan nizanin.

(Ev ayeta kerîme, îşaretê du heqîqetên giring kiriye:

a. Di her dewrê de ji hinceta wan muşrîkên nabin tabiê hîdayetê yek jî ev e ku, fikara xwe ya êrîşhatinê tînin ser ziman. Îdîa dikin ku eger ew bibin tabiê Kitêba Allah (ac) û li gor nîzama wî bijîn wê hêzên desthilatdar destûrê nedin wan û wê erdên wan dagir/îşgal bikin.

b. Ew Allah e (ac) ku, digel ku li ser şirkê ne jî wan dirizqîne û ewlehîyê dide wan, diyar kiriye ku li ser tewhîd û hîdayetê hê çêtir wê wan biparêze û qethîyen wan zayî nake.)

**58.** Me gelek civakên ku di nava xweşîyê de bitir bibûn helak kirin. Ha vaye xanîyên wan! Piştî wan -demekê pir kêm ne tê dedi wan de nehatîye rûniştin (ew der bûne wêran). Em bûne warisê wan deran.

**59.** Rabbê te heta ji navêndên welatan re/ji serbajaran re pêxemberekî ku ayetên me dixwîne neşîne, civaka welatekî helak nake. Û em, ji xeynî welatê ku xelkê wê zilimkar in pê ve helak nakin.

وَمَٓا اُو۫تٖيتُمْ مِنْ شَيْءٍ فَمَتَاعُ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَزٖينَتُهَاۚ وَمَا عِنْدَ
اللّٰهِ خَيْرٌ وَاَبْقٰىۜ اَفَلَا تَعْقِلُونَ۟ ﴿٦٠﴾ اَفَمَنْ وَعَدْنَاهُ وَعْدًا حَسَنًا
فَهُوَ لَاقٖيهِ كَمَنْ مَتَّعْنَاهُ مَتَاعَ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا ثُمَّ هُوَ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ
مِنَ الْمُحْضَرٖينَ ﴿٦١﴾ وَيَوْمَ يُنَادٖيهِمْ فَيَقُولُ اَيْنَ شُرَكَٓاءِيَ
الَّذٖينَ كُنْتُمْ تَزْعُمُونَ ﴿٦٢﴾ قَالَ الَّذٖينَ حَقَّ عَلَيْهِمُ الْقَوْلُ
رَبَّنَا هٰٓؤُ۬لَٓاءِ الَّذٖينَ اَغْوَيْنَاۚ اَغْوَيْنَاهُمْ كَمَا غَوَيْنَاۚ تَبَرَّاْنَٓا
اِلَيْكَۘ مَا كَانُٓوا اِيَّانَا يَعْبُدُونَ ﴿٦٣﴾ وَقٖيلَ ادْعُوا شُرَكَٓاءَكُمْ
فَدَعَوْهُمْ فَلَمْ يَسْتَجٖيبُوا لَهُمْ وَرَاَوُا الْعَذَابَۚ لَوْ اَنَّهُمْ كَانُوا
يَهْتَدُونَ ﴿٦٤﴾ وَيَوْمَ يُنَادٖيهِمْ فَيَقُولُ مَاذَٓا اَجَبْتُمُ الْمُرْسَلٖينَ ﴿٦٥﴾
فَعَمِيَتْ عَلَيْهِمُ الْاَنْبَٓاءُ يَوْمَئِذٍ فَهُمْ لَا يَتَسَٓاءَلُونَ ﴿٦٦﴾
فَاَمَّا مَنْ تَابَ وَاٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا فَعَسٰٓى اَنْ يَكُونَ
مِنَ الْمُفْلِحٖينَ ﴿٦٧﴾ وَرَبُّكَ يَخْلُقُ مَا يَشَٓاءُ وَيَخْتَارُۜ مَا كَانَ لَهُمُ
الْخِيَرَةُۜ سُبْحَانَ اللّٰهِ وَتَعَالٰى عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٦٨﴾ وَرَبُّكَ يَعْلَمُ
مَا تُكِنُّ صُدُورُهُمْ وَمَا يُعْلِنُونَ ﴿٦٩﴾ وَهُوَ اللّٰهُ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۜ
لَهُ الْحَمْدُ فِي الْاُو۫لٰى وَالْاٰخِرَةِۘ وَلَهُ الْحُكْمُ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٧٠﴾

**60.** Hemû tiştên ji we re hatîye dayîn, zînet û metaên dinyayê (ya bihorbar) in. Heçî tiştên li cem Allah in herî bixêrtir û baqî/mayînde ne. Hûn aqil nagirin?

**61.** (Wiha bifikirin: Li alîyekî) ew kesê ku me weadeke xweşik daye wî û (di dawî de) wê rastî wê (weadê) bibe; (li alîyê din) kesekî ku me ew li heyata dinyayê (bi nîmetên derbasdar/muweqet) îstîfade kiriye û roja qiyametê (ji bo cezakirinê) wê derkeve hizûrê... (Niha bibêjin: Ev herdu qet dibin weke hevdu?)

**62.** Wê rojê dê (Allah, wiha) gazî wan bike: "Kanê, ew ên we hizir dikir ku ew şirîkên min in?"

**63.** Ew ên ku ehd (ezab) li ser wan heq bûye dibêjin: "Rabbê me! Ew ên ku me wan xerifandine ha ev in! Çawa ku em har bibûn me ew jî har kirin û em (a niha) ji wan dûrketin û hatin cem te. Ew, ne îbadetkarên /perestîşkarên me bûn."

**64.** Tê gotin: "Gazî wan şirîkên xwe bikin." Gazî dikin, lê nikarin bersivê bidin wan. Ezabê jî dibînin. Qey ew li ser hîdayetê bibûna (wê çi winda bikirana)?

**65.** Wê rojê dê (Allah, wiha) gazî wan bike: "We çi bersiv da pêxemberan?"

(Du pirsên bingehî hene ku wê di axîretê de ji mirov bên pirsîn: Pirsa yekem tewhîd e. Wê jê bê pirsîn ka wî îbadetê kî kiriye û ji bo xwe kî wek îlâh û rab girtîye. Pirsa duyem jî ev e; ka wî çi bersivê daye pêxember û çiqas îttîbaê sunneta pêxemberê ku ûmmeta wî ye dike. Herwiha divê ku evd; agahîya xwe û amelê xwe û hewl û xebata xwe li ser van her du esasan teksif bike/li ser bisekine.)

**66.** Ew roj, agahî bitevahî ji wan re girtî dimînin (nizanin wê çi bersiv bidin). Ew nikarin pirs jî ji hev bikin.

**67.** Kî jî tobedar be û îman bîne û amelên salih bike, hêvî heye ku ew bibe ji xelasbûyîyan.

**68.** Rabbê te kî bixwaze dixuliqîne û hildibijêre (û serdest dike). Hilbijartin ne aîdê wan e. Allah, ji tiştên ku ew pê şirîkatîyê dikin munezzeh û berz/bilind e.

**69.** Rabbê te bi ya ku ew di singa xwe de vedişêrin jî û bi ya ku eşkere dikin jî dizane.

**70.** Ew, Allah e ku; ji wî pê ve qet tu îlâh (ên ku îbadetê heq dikin) tune. Di ser de (li dinyayê) jî û di dawî de (li axîretê) jî hamd jê re ye. Hukim bitenê aîdê wî ye. Hûn ê bi bal wî ve bên vegerandin.

قُلْ اَرَاَيْتُمْ اِنْ جَعَلَ اللّٰهُ عَلَيْكُمُ الَّيْلَ سَرْمَدًا اِلٰى يَوْمِ
الْقِيٰمَةِ مَنْ اِلٰهٌ غَيْرُ اللّٰهِ يَأْتِيكُمْ بِضِيَٓاءٍۜ اَفَلَا تَسْمَعُونَ ﴿٧١﴾
قُلْ اَرَاَيْتُمْ اِنْ جَعَلَ اللّٰهُ عَلَيْكُمُ النَّهَارَ سَرْمَدًا
اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ مَنْ اِلٰهٌ غَيْرُ اللّٰهِ يَأْتِيكُمْ بِلَيْلٍ تَسْكُنُونَ
فِيهِۜ اَفَلَا تُبْصِرُونَ ﴿٧٢﴾ وَمِنْ رَحْمَتِهِ جَعَلَ لَكُمُ الَّيْلَ
وَالنَّهَارَ لِتَسْكُنُوا فِيهِ وَلِتَبْتَغُوا مِنْ فَضْلِهِ وَلَعَلَّكُمْ
تَشْكُرُونَ ﴿٧٣﴾ وَيَوْمَ يُنَادِيهِمْ فَيَقُولُ اَيْنَ شُرَكَٓائِيَ الَّذِينَ
كُنْتُمْ تَزْعُمُونَ ﴿٧٤﴾ وَنَزَعْنَا مِنْ كُلِّ اُمَّةٍ شَهِيدًا
فَقُلْنَا هَاتُوا بُرْهَانَكُمْ فَعَلِمُٓوا اَنَّ الْحَقَّ لِلّٰهِ وَضَلَّ عَنْهُمْ
مَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ﴿٧٥﴾ اِنَّ قَارُونَ كَانَ مِنْ قَوْمِ مُوسٰى فَبَغٰى
عَلَيْهِمْ وَاٰتَيْنَاهُ مِنَ الْكُنُوزِ مَٓا اِنَّ مَفَاتِحَهُ لَتَنُٓوأُ
بِالْعُصْبَةِ اُولِى الْقُوَّةِ اِذْ قَالَ لَهُ قَوْمُهُ لَا تَفْرَحْ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ
الْفَرِحِينَ ﴿٧٦﴾ وَابْتَغِ فِيمَٓا اٰتٰيكَ اللّٰهُ الدَّارَ الْاٰخِرَةَ
وَلَا تَنْسَ نَصِيبَكَ مِنَ الدُّنْيَا وَاَحْسِنْ كَمَٓا اَحْسَنَ اللّٰهُ اِلَيْكَ
وَلَا تَبْغِ الْفَسَادَ فِي الْاَرْضِۜ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ الْمُفْسِدِينَ ﴿٧٧﴾

**71.** Bibêje: “Ramana we/Fikrê we çiye? (Ka bibêjin?) Eger Allah heta roja qiyametê şev li ser we daîmî bihêle, ji Allah pê ve ka kîjan îlâh heye ku bikaribe ji we re ronahîyê bîne? Ma hûn nabihîzin?

**72.** Bibêje: “Ramana we/Fikrê we çiye? (Ka bibêjin?) Eger Allah heta roja qiyametê roj li ser we daîmî bihêle, ji Allah pê ve ka kîjan îlâh heye ku bikaribe ji we re şeva ku ji bo we dema îstirahetê ye bîne? Ma hûn nabînin?

**73.** Ji bo ku hûn tê de îstirahet bikin û li lutfa Allah bigerin, xuliqandina wî ya şev û rojê jî ji rahmeta wî ye. Hêvî heye ku hûn şikur bikin.

**74.** Ew roj wê (Allah, wiha) gazî wan bike: “Kanê, ew ên we hizir dikir ku ew şirîkên min in?”

**75.** Em ji her ummetê şahidekî vediqetînin û derdixin û wiha dibêjin: “Ka wê delîlê xwe (yên li ser heqîya kar û kirinên we ku di wan de qet tu guman tune bînin (em bibînin)!” Fêm kirin ku heq aîdê Allah e û bêbextîyê/neweyîyê wan (a bi gotina ji bo ku me nêzî Allah bike li ser navê Allah mehdervan/şefaetvan lihev tînin) jî winda bûye, çûye.

**76.** Bêguman Qarûn, ji qewmê Mûsa bû. (Lê belê) li dij wan ji hedê xwe borîbû û har/bitir bibû. Me xezîneyê/gencîneyê wisan (zêde) dabû wî, heta ku miftên wan jî ji civakeke bihêz/qelebalix re giran dihat. Qewmê wî jê re wiha gotibû: “Bifir/şaqiz nebe û nenepixe. Lewre Allah ji rûgirtîyan û ji ew ên dinepixin hez nake.”

**77.** (Gotibû:) “Tu bi wan tiştên ku Allah daye te, ji bo bi dest xistina warê axîretê bixebite û nesîbê xwe yê li dinyayê jî ji bîr neke. Çawa ku Allah lutûf li te kiriye tu jî qencîyê bike. Li ser rûyê erdê daxwaza fesadîyê neke. Lewre Allah hez mufsîdan nake.”

قَالَ اِنَّمَٓا اُو۫تِيتُهُ عَلٰى عِلْمٍ عِنْدٖيۜ اَوَلَمْ يَعْلَمْ اَنَّ اللّٰهَ قَدْ اَهْلَكَ
مِنْ قَبْلِهٖ مِنَ الْقُرُونِ مَنْ هُوَ اَشَدُّ مِنْهُ قُوَّةً وَاَكْثَرُ جَمْعًاۜ
وَلَا يُسْـَٔلُ عَنْ ذُنُوبِهِمُ الْمُجْرِمُونَ ﴿٧٨﴾ فَخَرَجَ عَلٰى قَوْمِهٖ
فٖي زٖينَتِهٖۜ قَالَ الَّذٖينَ يُرٖيدُونَ الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا يَا لَيْتَ لَنَا مِثْلَ
مَٓا اُو۫تِيَ قَارُونُۙ اِنَّهُ لَذُو حَظٍّ عَظٖيمٍ ﴿٧٩﴾ وَقَالَ الَّذٖينَ اُو۫تُوا
الْعِلْمَ وَيْلَكُمْ ثَوَابُ اللّٰهِ خَيْرٌ لِمَنْ اٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًاۚ
وَلَا يُلَقّٰيهَٓا اِلَّا الصَّابِرُونَ ﴿٨٠﴾ فَخَسَفْنَا بِهٖ وَبِدَارِهِ الْاَرْضَ
فَمَا كَانَ لَهُ مِنْ فِئَةٍ يَنْصُرُونَهُ مِنْ دُونِ اللّٰهِۗ
وَمَا كَانَ مِنَ الْمُنْتَصِرٖينَ ﴿٨١﴾ وَاَصْبَحَ الَّذٖينَ تَمَنَّوْا مَكَانَهُ
بِالْاَمْسِ يَقُولُونَ وَيْكَاَنَّ اللّٰهَ يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَٓاءُ
مِنْ عِبَادِهٖ وَيَقْدِرُۚ لَوْلَٓا اَنْ مَنَّ اللّٰهُ عَلَيْنَا لَخَسَفَ بِنَاۜ وَيْكَاَنَّهُ
لَا يُفْلِحُ الْكَافِرُونَ ﴿٨٢﴾ تِلْكَ الدَّارُ الْاٰخِرَةُ نَجْعَلُهَا لِلَّذٖينَ
لَا يُرٖيدُونَ عُلُوًّا فِي الْاَرْضِ وَلَا فَسَادًاۜ وَالْعَاقِبَةُ لِلْمُتَّقٖينَ ﴿٨٣﴾
مَنْ جَٓاءَ بِالْحَسَنَةِ فَلَهُ خَيْرٌ مِنْهَاۚ وَمَنْ جَٓاءَ بِالسَّيِّئَةِ
فَلَا يُجْزَى الَّذٖينَ عَمِلُوا السَّيِّـَٔاتِ اِلَّا مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٨٤﴾

**78.** Got: "Ev (serwet), ji ber zanîna/tecrûbeya/hunerwerîya min ji min re hatîye dayîn." Ma qey nizanîbû ku Allah, wan kesên ku ji wî herî xurttir û serweta komkiribûn herî zêdetir bûn jî helak kiriye. Ji mucrîman gunehên wan nayê pirskirin.

**79.** Bi xeml (û xişrên ku dewlemendîya wî derdixîne holê) derket pêşberî qewmê xwe. Ew ên ku heyata dinyayê dixwestin (wiha) gotin: "Xwezî wekî ya ku ji Qarûn re hatîye dayîn (dewlemendîyeke wisan) ji me re jî hebûya." Bi rastî ew xwedî hebûneke/siûdeke mezin e."

**80.** Ew ên ku ilim ji wan re hatibû dayîn (wiha) gotin: "Xwelî li serê we be! Ji bo wan kesên îman anîne û amelê salih dikin re xêra/sewaba Allah bixêrtir e." (Li hember xeml û şatafata dinyayê ya bihûrbar de di pêşandina vê helwestê de) enceq ew ên sebirkar muweffeq dibin.

**81.** Me ew jî û qesrê wî jî binerd kir. Civakeke ku li hemberî Allah alîkarîya wî bikin jî tune bû. Ew, nebû alîkarê xwe bixwe jî.

**82.** Ew ên ku duh dixwestin di şûna wî de bin, sibehê wiha dest bi gotinê kirin: "Wey! Nexwe rast e ku Allah ji kîjan evdê xwe re daxwaz bike rizqê wî fireh dike û (ji bo kî jî bixwaze) teng dike. Eger Allah bi lutfa xwe bi me re nekiribûya (û me ji bûyîna weke Qarûn ne parastibûna) wê me jî binerd bikirana. Wey! Nexwe rast e ku ew ên kafir nagihîjin xelasîyê!"

**83.** Ha (ev) warê axîretê ye. Em wê didin wan kesên ku li ser rûyê erdê fesadê naxwazin û çavdêrîya bitirtîyê nakin. Aqûbet (a xweşik) yê Mutteqîyan e.

**84.** Kî bi qencîyekê were (hizûra Allah), jê re ya herî bixêrtir heye. Kî jî bi xerabîyê were, êdî ew ên xerabî kirine tenê bi qasî ya ku kirine berdêla wan tê dayîn.

إِنَّ الَّذ۪ي فَرَضَ عَلَيْكَ الْقُرْاٰنَ لَرَٓادُّكَ اِلٰى مَعَادٍۜ قُلْ رَبّ۪ٓي اَعْلَمُ
مَنْ جَٓاءَ بِالْهُدٰى وَمَنْ هُوَ ف۪ي ضَلَالٍ مُب۪ينٍ ﴿٨٥﴾ وَمَا كُنْتَ تَرْجُٓوا
اَنْ يُلْقٰٓى اِلَيْكَ الْكِتَابُ اِلَّا رَحْمَةً مِنْ رَبِّكَ فَلَا تَكُونَنَّ ظَه۪يرًا
لِلْكَافِر۪ينَۘ ﴿٨٦﴾ وَلَا يَصُدُّنَّكَ عَنْ اٰيَاتِ اللّٰهِ بَعْدَ اِذْ اُنْزِلَتْ اِلَيْكَ وَادْعُ
اِلٰى رَبِّكَ وَلَا تَكُونَنَّ مِنَ الْمُشْرِك۪ينَۚ ﴿٨٧﴾ وَلَا تَدْعُ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَۢ
لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۜ كُلُّ شَيْءٍ هَالِكٌ اِلَّا وَجْهَهُۜ لَهُ الْحُكْمُ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٨٨﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
الٓمٓ ﴿١﴾ اَحَسِبَ النَّاسُ اَنْ يُتْرَكُٓوا اَنْ يَقُولُٓوا اٰمَنَّا وَهُمْ
لَا يُفْتَنُونَ ﴿٢﴾ وَلَقَدْ فَتَنَّا الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْ فَلَيَعْلَمَنَّ اللّٰهُ
الَّذ۪ينَ صَدَقُوا وَلَيَعْلَمَنَّ الْكَاذِب۪ينَ ﴿٣﴾ اَمْ حَسِبَ الَّذ۪ينَ يَعْمَلُونَ
السَّيِّـَٔاتِ اَنْ يَسْبِقُونَاۜ سَٓاءَ مَا يَحْكُمُونَ ﴿٤﴾ مَنْ كَانَ يَرْجُوا
لِقَٓاءَ اللّٰهِ فَاِنَّ اَجَلَ اللّٰهِ لَاٰتٍۜ وَهُوَ السَّم۪يعُ الْعَل۪يمُ ﴿٥﴾
وَمَنْ جَاهَدَ فَاِنَّمَا يُجَاهِدُ لِنَفْسِه۪ۜ اِنَّ اللّٰهَ لَغَنِيٌّ عَنِ الْعَالَم۪ينَ ﴿٦﴾

**85.** Bêguman ew Allahê ku vê (Qur'anê) li ser te (bi xwendin û bi jîyîn û bi cîhada pê û bi gazîkirina lê) ferz kiriye, wê te dîsa vegerîne cihê vegerê (Mekkeyê). Bibêje: “Rabbê min herî çêtir dizane ka kî li ser hîdayetê hatîye û kî jî di nav rêşaşîyeke vikîvekirî de ye.”

**86.** Tu ne hêvîdar bûyî ku wê Kitêb ji te re bê wehîy kirin. Lakîn (ew) wek rahmeteke ji Rabbê te (ji te re hate wehîykirin). (Herwiha) tu ji kafiran re nebe piştevan.

**87.** Piştî ku ayetên Allah ji te re nazil bûn, nebe ku destê te jê bigirin. Tu gazî Rabbê xwe bike û nebe ku tu bibî ji muşrîkan.



**88.** Ligel Allah ji îlâhekî din re dûa neke. Ji wî pê ve qet tu îlâh (ên ku îbadetê heq dikin) tune. Ji xeynî wî wê her tişt helak bibe. Hukim bitenê aîdê wî ye. Hûn ê bi bal wî ve bên vegerandin.

## 29. SÛREYA ANKEBÛT

*Sûreya Ankebût, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û şêst û neh (69) ayet e.*

*Di Qur'anê de sûreya bîst û nehemîn e. Ankebût, tê ser maneya pîrepind/pindepîr. Peyva ankebût di ayeta 41. de derbas dibe û di vê ayetê de karên kafiran wek tevnepîr/konik hatîye teşbih kirin. Sûreya Ankebût, navê xwe ji vê ayetê sitendîye. Ev sûre bi gelemperî mijara wehdanîyeta Allah (ac) û pêxembertî û vejîna piştî mirinê vedibêje. Behsa qiseyên hin pêxemberan û qewmê Ad û Semûd û kesîyatîyên wekî Karûn û Hâmân jî dike.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Elîf, Lam, Mîm.

**2.** Nexwe ji însanan we ye ku ew bibêjin: “Me îman anî.” wê dev ji wan bê berdan û ew ê neyên îmtîhankirin?

**3.** Sond be, me ew ên berîya wan jî îmtîhan kiribûn. Helbet Allah, bi kesên rast jî dizane û bi derewkaran jî dizane. (Û bi îmtîhanan dike ku însan jî pê bizanibin.)

**4.** Qey ew ên xerabîyê dikin, zen dikin ku dê bikevin pêşîya me (û wê ji me xelas bibin)? Çiqas xerab hikum didin.

**5.** Ew ê ku ji leqayîhatina Allah (û ji mikafata jê) hêvîdar e, bêguman ew dema ku Allah diyar kiriye wê were. Ew (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**6.** Kî cîhadê bike ew bitenê ji bo xwe cîhadê dike. Bêguman Allah ji aleman mustexnî ye (ne hewcedarê wan û evdîtîya wan e).

(Di vê sûreyê de têgeha “cîhad” du car dibore. A yekem ev ayet e û ya duyem jî ayeta 69. e. Ev sûre Mekkî ye. Qesta cîhadê ya di vê sûreyê de, ne di maneya qîtal (şer) de ye ku di Qur'anê de bi giştî di vê manê de dibore; di maneya sebra li dij îmtîhanan û li ser xala emr û nehyên Allah (ac) de terbîya nefsê tê qestkirin. (Bnr. 25/Furqan, 52))

وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَنُكَفِّرَنَّ عَنْهُمْ سَيِّـَٔاتِهِمْ
وَلَنَجْزِيَنَّهُمْ اَحْسَنَ الَّذ۪ي كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٧﴾ وَوَصَّيْنَا
الْاِنْسَانَ بِوَالِدَيْهِ حُسْنًاۜ وَاِنْ جَاهَدَاكَ لِتُشْرِكَ ب۪ي مَا لَيْسَ
لَكَ بِه۪ عِلْمٌ فَلَا تُطِعْهُمَاۜ اِلَيَّ مَرْجِعُكُمْ فَاُنَبِّئُكُمْ بِمَا
كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٨﴾ وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
لَنُدْخِلَنَّهُمْ فِي الصَّالِح۪ينَ ﴿٩﴾ وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يَقُولُ اٰمَنَّا
بِاللّٰهِ فَاِذَٓا اُو۫ذِيَ فِي اللّٰهِ جَعَلَ فِتْنَةَ النَّاسِ كَعَذَابِ اللّٰهِۜ
وَلَئِنْ جَٓاءَ نَصْرٌ مِنْ رَبِّكَ لَيَقُولُنَّ اِنَّا كُنَّا مَعَكُمْۜ اَوَلَيْسَ
اللّٰهُ بِاَعْلَمَ بِمَا ف۪ي صُدُورِ الْعَالَم۪ينَ ﴿١٠﴾ وَلَيَعْلَمَنَّ اللّٰهُ الَّذ۪ينَ
اٰمَنُوا وَلَيَعْلَمَنَّ الْمُنَافِق۪ينَ ﴿١١﴾ وَقَالَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا لِلَّذ۪ينَ
اٰمَنُوا اتَّبِعُوا سَب۪يلَنَا وَلْنَحْمِلْ خَطَايَاكُمْۜ وَمَا هُمْ بِحَامِل۪ينَ
مِنْ خَطَايَاهُمْ مِنْ شَيْءٍۜ اِنَّهُمْ لَكَاذِبُونَ ﴿١٢﴾ وَلَيَحْمِلُنَّ
اَثْقَالَهُمْ وَاَثْقَالًا مَعَ اَثْقَالِهِمْ وَلَيُسْـَٔلُنَّ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ عَمَّا كَانُوا
يَفْتَرُونَ ﴿١٣﴾ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا نُوحًا اِلٰى قَوْمِه۪ فَلَبِثَ ف۪يهِمْ اَلْفَ
سَنَةٍ اِلَّا خَمْس۪ينَ عَامًاۜ فَاَخَذَهُمُ الطُّوفَانُ وَهُمْ ظَالِمُونَ ﴿١٤﴾

**7.** Ew ên îman anîne û amelên salih kirine jî em ê qisûrên wan binixumînin û em ê wan bi mikafatekî ji amelên wan herî xweşiktir xelat bikin.

**8.** Me şîret li însan kir da ku bi xweşikahî muamele bi dê û bavê xwe re bike. Eger ew herdu bixwazin tiştekî ku zanîna te pê tune ji min re bikî şirîk, êdî tu îtaeta wan neke. Vegera we her bi bal min ve ye û ez ê we ji kar û kirinên we agahdar bikim.

**9.** Ew ên îman anîne û amelên salih kirine jî helbet em ê wan daxilê (nav evdên xwe) yên salih bikin.

**10.** Ji însanan hin kes hene ku dibêjin: “Me îman bi Allah anîye.” Lê belê gava ku di oxira dînê Allah de bêne êşandin, ezîyeta însanan wekî ezabê Allah dihesibînin. Eger ji Rabbê te serkeftinek/alîkarîyek were, wiha dibêjin: “Bêşik em jî bi we re bûn.” (Erê ma) Allah, ne ew e ku (ji îman û nifaqê) di dilê aleman de her çi hebe herî çêtir dizane? (Qey bi vêya jî nizanin?)

**11.** Teqez Allah, bi yên îman anîne jî û bi munafiqan jî dizane (û bi îmtîhanan vê heqîqetê bi însanan jî dide zanîn).

**12.** Kafiran ji mumînan re gotin: “Bidin pey rêya me/tabiê dînê me bibin, (wekî ku hûn îdîa dikin eger heyata axîretê hebe) em ê gunehên we li xwe bar bikin.” (Hal ev e ku) ji gunehên wan nikarin qet tu tiştekî jî hilgirin. Bêguman ew, derewkar in.

**13.** Bêguman wê ew, ligel barên xwe barên wan (kesên ku xerifandine) jî wê hilgirin. Û roja qiyametê jî ji tiştên ji ber xwe ve lihevanîne jî teqez wê bikişin hisabê.

**14.** Sond be me Nûh ji qewmê wî re şand. Ew pêncî kêm hezar sal di nav wan de ma. Dema ku wan zilimkarîya xwe didomandin tofan bi wan girt.

فَاَنْجَيْنَاهُ وَاَصْحَابَ السَّفِينَةِ وَجَعَلْنَاهَٓا اٰيَةً لِلْعَالَمِينَ ﴿١٥﴾
وَاِبْرٰهِيمَ اِذْ قَالَ لِقَوْمِهِ اعْبُدُوا اللّٰهَ وَاتَّقُوهُۜ ذٰلِكُمْ خَيْرٌ
لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿١٦﴾ اِنَّمَا تَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ اَوْثَانًا وَتَخْلُقُونَ اِفْكًاۜ اِنَّ الَّذِينَ تَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ لَا يَمْلِكُونَ لَكُمْ رِزْقًا فَابْتَغُوا عِنْدَ اللّٰهِ الرِّزْقَ
وَاعْبُدُوهُ وَاشْكُرُوا لَهُۜ اِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿١٧﴾ وَاِنْ تُكَذِّبُوا
فَقَدْ كَذَّبَ اُمَمٌ مِنْ قَبْلِكُمْۜ وَمَا عَلَى الرَّسُولِ
اِلَّا الْبَلَاغُ الْمُبِينُ ﴿١٨﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا كَيْفَ يُبْدِئُ اللّٰهُ
الْخَلْقَ ثُمَّ يُعِيدُهُۜ اِنَّ ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَسِيرٌ ﴿١٩﴾ قُلْ سِيرُوا
فِي الْاَرْضِ فَانْظُرُوا كَيْفَ بَدَاَ الْخَلْقَ ثُمَّ اللّٰهُ يُنْشِئُ النَّشْاَةَ
الْاٰخِرَةَۜ اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌۚ ﴿٢٠﴾ يُعَذِّبُ مَنْ يَشَٓاءُ
وَيَرْحَمُ مَنْ يَشَٓاءُۚ وَاِلَيْهِ تُقْلَبُونَ ﴿٢١﴾ وَمَٓا اَنْتُمْ بِمُعْجِزِينَ
فِي الْاَرْضِ وَلَا فِي السَّمَٓاءِۘ وَمَا لَكُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
مِنْ وَلِيٍّ وَلَا نَصِيرٍۚ ﴿٢٢﴾ وَالَّذِينَ كَفَرُوا بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَلِقَٓائِه۪ٓ
اُو۬لٰٓئِكَ يَئِسُوا مِنْ رَحْمَت۪ي وَاُو۬لٰٓئِكَ لَهُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٢٣﴾

**15.** Me ew û ehlê keştîyê xelas kirin. Û me wê (keştîyê) ji aleman re kir ayetek (da ku îbret bigirin).

**16.** (Me) Îbrahîm jî (ji qewmê wî re şand). Wê demê ji qewmê xwe re wiha gotibû: "Ji Allah re îbadet bikin û ji wî bitirsin û xwe biparêzin. Eger hûn bizanibin ev ji bo we ya herî bixêrtir e."

**17.** "Hûn dev ji Allah berdidin û ji hinek pûtan re perestîyê dikin û derewên ku bêbinî ne lihev tînin. Bêguman ew ên ku hûn dev ji Allah berdidin û perestîyê ji wan re dikin, ne xwedî tu hêzî ne ku ew hûn birizqînin. Rizqê xwe li cem Allah bigerin/bixwazin. Îbadetê wî bikin û jê re şikur bikin. (Lewre di axir de) hûn ê li wî bêne vegerandin."

**18.** "Eger hûn biderewînin, bêguman qewmên berîya we jî derewandin. Wezîfa pêxember, enceq teblîxeke vikîvekirî ye."

**19.** Qey nedîtin ku Allah çawa dest bi xuliqandinê dike û piştre jî (bi vejandinê) vêya çawa dubare dike? Bêguman ev ji bo Allah pir hêsan e.

**20.** Bibêje: "Li ser rûyê erdê bigerin û bifetilin ka Allah çawa dest bi xuliqandinê kiriye, bibînin. Paşê wê Allah, heyata axîretê bixuliqîne û heyî bike. Bêguman Allah qadirê her tiştî ye."

**21.** (Ew) her kî bivê dide ezabê û kî jî bivê merhamet lê dike. Hûn ê li wî bêne vegerandin.

**22.** Hûn, li erd û esman (di mijara astengîya pêkanîna weada Allah) de nikarin wî aciz/bêçar bihêlin. Ji we re ji xeynî Allah ne dostek û ne jî alîkarek heye.

**23.** Ew ên ayetên Allah û leqayîhatina wî înkar dikin... Ewana ji rahmeta min hêvîya xwe birîne. Ji wan re ezabekî biêş û jan heye.

فَمَا كَانَ جَوَابَ قَوْمِهٖٓ اِلَّٓا اَنْ قَالُوا اقْتُلُوهُ
اَوْ حَرِّقُوهُ فَاَنْجٰيهُ اللّٰهُ مِنَ النَّارِؕ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ
يُؤْمِنُونَ ﴿٢٤﴾ وَقَالَ اِنَّمَا اتَّخَذْتُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَوْثَانًاۙ
مَوَدَّةَ بَيْنِكُمْ فِى الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۚ ثُمَّ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ يَكْفُرُ
بَعْضُكُمْ بِبَعْضٍ وَيَلْعَنُ بَعْضُكُمْ بَعْضًاۘ وَمَاْوٰيكُمُ
النَّارُ وَمَا لَكُمْ مِنْ نَاصِرٖينَۗ ﴿٢٥﴾ فَاٰمَنَ لَهُ لُوطٌۢ وَقَالَ
اِنّٖى مُهَاجِرٌ اِلٰى رَبّٖيؕ اِنَّهُ هُوَ الْعَزٖيزُ الْحَكٖيمُ ﴿٢٦﴾
وَوَهَبْنَا لَهُٓ اِسْحٰقَ وَيَعْقُوبَ وَجَعَلْنَا فٖى ذُرِّيَّتِهِ النُّبُوَّةَ
وَالْكِتَابَ وَاٰتَيْنَاهُ اَجْرَهُ فِى الدُّنْيَاۚ وَاِنَّهُ فِى الْاٰخِرَةِ
لَمِنَ الصَّالِحٖينَ ﴿٢٧﴾ وَلُوطًا اِذْ قَالَ لِقَوْمِهٖٓ اِنَّكُمْ
لَتَاْتُونَ الْفَاحِشَةَۘ مَا سَبَقَكُمْ بِهَا مِنْ اَحَدٍ
مِنَ الْعَالَمٖينَ ﴿٢٨﴾ اَئِنَّكُمْ لَتَاْتُونَ الرِّجَالَ وَتَقْطَعُونَ
السَّبٖيلَ وَتَاْتُونَ فٖى نَادٖيكُمُ الْمُنْكَرَؕ فَمَا كَانَ
جَوَابَ قَوْمِهٖٓ اِلَّٓا اَنْ قَالُوا ائْتِنَا بِعَذَابِ اللّٰهِ اِنْ كُنْتَ
مِنَ الصَّادِقٖينَ ﴿٢٩﴾ قَالَ رَبِّ انْصُرْنٖى عَلَى الْقَوْمِ الْمُفْسِدٖينَ ﴿٣٠﴾

**24.** (Li hemberî daweta Îbrahîm ya tewhîdê re) bersiva qewmê wî, ji vê gotinê pê ve ne tiştekî din bû: "Wî bikujin an jî bişewitînin!" Allah, ew ji agir xelas kir. Bêguman di vêya de ji qewmekî mumîn re (li ser mijara ku Allah alîkarî û piştgirîya dostên xwe dike) ayet hene.

**25.** Got: "We dev ji Allah berda û ji bo ku dilê we ji hev re germ bike/di navbera we de hezkirinê pêk bîne, we di heyata dinyayê de pûtan ji xwe re (îlâh) girt. Paşê roja qiyametê (hezkirin li alîyekî) hin ji we dê hinên din înkar bikin û hin ji we jî wê qedal/lanet li hinên din bikin. Hêwîrgeha we agir e. Qet tu alîkarê we jî tune."

(Kesên muşrîk, bi meqsedên ji hev cuda ji bo xwe pûtan digirin. Hin caran peykera wan kesên ku bi salihbûna wan bawer in çêdikin û hêvî dikin ku ew dê wan nêzî Allah (ac) bike. Car caran jî hin rûmetên ku dibin wesîleya ligelhevbûna/bihevrebûna civakê, ji wan re dikin pût. Secde lênekirin an qurban serjênekirina ji wan re, nayê ser vê maneyê ku ew ne pût in. Ev (pûtê ha) dibe ku carinan ala/beyreq e û car caran abîde ye û hin caran bi navê cejn rojekî taybet e û carinan jî nîgar/bust e.)

**26.** Lût, îman pê anî. Û wiha got: "Qet tu guman tune ku ez ê hîcretê Rabbê xwe bikim. Lewre ew, (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm bixwe ye.

**27.**Me Îshaq û Yaqûb da wî. Û me nubûwet û Kitêb da zurîyeta wî. Me mikafata wî li dinyayê dayê. Bêşik ew li axîretê jî ji salihan e.

**28.** (Me) Lût jî (şand). Wê demê ji qewmê xwe re wiha gotibû: "Bi rastî ev karê xerab a ku hûn dikin, berîya we ji aleman/li dinyayê qet tu kesî nekiriye."

**29.** "Hûn ê nêzî zilaman bibin û rê bibirin û di cîvatên xwe de munkeratan/xerabîyan bikin û vêya bidomînin ha?" Bersiva qewmê wî ji vê gotinê pê ve ne tiştekî din bû: "Eger tu di gotina xwe de rast î, de ka ezabê Allah ji me re bîne (em bibînin)."

**30.** Bibêje: "Rabbê min, li hemberî (vê) qewmê mufsîd/xerabker tu alîkarîya min bike."

وَلَمَّا جَٓاءَتْ رُسُلُنَٓا اِبْرٰهٖيمَ بِالْبُشْرٰىۙ قَالُٓوا اِنَّا مُهْلِكُٓوا
اَهْلِ هٰذِهِ الْقَرْيَةِۚ اِنَّ اَهْلَهَا كَانُوا ظَالِمٖينَۚ ﴿٣١﴾
قَالَ اِنَّ فٖيهَا لُوطًاۜ قَالُوا نَحْنُ اَعْلَمُ بِمَنْ فٖيهَاۙ
لَنُنَجِّيَنَّهُ وَاَهْلَهُٓ اِلَّا امْرَاَتَهُۙ كَانَتْ مِنَ الْغَابِرٖينَ ﴿٣٢﴾
وَلَمَّٓا اَنْ جَٓاءَتْ رُسُلُنَا لُوطًا سٖٓيءَ بِهِمْ وَضَاقَ بِهِمْ
ذَرْعًا وَقَالُوا لَا تَخَفْ وَلَا تَحْزَنْ قف اِنَّا مُنَجُّوكَ
وَاَهْلَكَ اِلَّا امْرَاَتَكَ كَانَتْ مِنَ الْغَابِرٖينَ ﴿٣٣﴾
اِنَّا مُنْزِلُونَ عَلٰٓى اَهْلِ هٰذِهِ الْقَرْيَةِ رِجْزًا مِنَ السَّمَٓاءِ
بِمَا كَانُوا يَفْسُقُونَ ﴿٣٤﴾ وَلَقَدْ تَرَكْنَا مِنْهَٓا اٰيَةً بَيِّنَةً
لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ﴿٣٥﴾ وَاِلٰى مَدْيَنَ اَخَاهُمْ شُعَيْبًاۙ فَقَالَ
يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ وَارْجُوا الْيَوْمَ الْاٰخِرَ وَلَا تَعْثَوْا فِي الْاَرْضِ
مُفْسِدٖينَ ﴿٣٦﴾ فَكَذَّبُوهُ فَاَخَذَتْهُمُ الرَّجْفَةُ فَاَصْبَحُوا
فٖي دَارِهِمْ جَاثِمٖينَۙ ﴿٣٧﴾ وَعَادًا وَثَمُودَا۬ وَقَدْ تَبَيَّنَ لَكُمْ
مِنْ مَسَاكِنِهِمْ قف وَزَيَّنَ لَهُمُ الشَّيْطَانُ اَعْمَالَهُمْ
فَصَدَّهُمْ عَنِ السَّبٖيلِ وَكَانُوا مُسْتَبْصِرٖينَۙ ﴿٣٨﴾

**31.** Dema qasidên me/melâîket bi mizgînekê ji Îbrahîm re hatibûn wiha gotin: “Em ê ehlê vî bajarî helak bikin. Bêguman ehlê wî, bûn ji zaliman.”

**32.** Got: “Di nav wî (bajarî) de Lût jî heye! Gotin: “Em pir baş dizanin kî di navê de heye. Muheqeq em ê wî û malbata wî xelas bikin, lê jina wî ne têde. Wê (jina wî) bibe ji yên li paşmayîyan.”

**33.** Dema qasidên me/melâîket hatin cem Lût, ji ber wan xemgîn û dilteng bû û rêderekî nedît. Gotin: “Netirse û xemgîn jî nebe! Bêşik, jina te ne têde em ê te û malbata te xelas bikin. (Lê jina te) wê bibe ji yên li paşmayîyan.”

**34.** “Bêguman bi ser xelkê vî welatî de, ji ber mufsîdîya wan em ê ezabekî ji esman daxînin.”

**35.** Sond be, ji bo qewmekî aqilmend me li wir ayeteke eşkere (yê bi îbret) hiştîye.”

**36.** (Me) ji Medyen re jî birayê wan Şuayb (şand). Gotibû: “Gelî qewmê min! Ji Allah re îbadet bikin! Roja axîretê (ji sewab girtina ji Allah) hêvîdar bin. Bi fesadîya li ser rûyê erdê tevdanê/bênîzamîyê/zêde pê de çûnê nekin/dernexin.”

**37.** Wî derewandin. (Li ser vê) erdhêjeke erjeng/tirsnak bi wan girt û di warê xwe bixwe de çokdayî man.

**38.** (Me) Ad û Semud jî (helak kir). Warên ku ew li wê derê runiştî bûn (ew ên me wan helak kirine) ji bo we derketîye holê. Şeytan amelên wan ji wan re xemiland û (herwiha) wan (ji rêya rast) xerifand. Ew bixwe (bi qasî ku heqîqetê fêm bikin) çavvekirî û bîrewer jî bûn.

وَقَارُونَ وَفِرْعَوْنَ وَهَامَانَ وَلَقَدْ جَٓاءَهُمْ مُوسٰى بِالْبَيِّنَاتِ
فَاسْتَكْبَرُوا فِي الْاَرْضِ وَمَا كَانُوا سَابِقِينَ ﴿٣٩﴾
فَكُلًّا اَخَذْنَا بِذَنْبِهِ فَمِنْهُمْ مَنْ اَرْسَلْنَا عَلَيْهِ حَاصِبًا
وَمِنْهُمْ مَنْ اَخَذَتْهُ الصَّيْحَةُ وَمِنْهُمْ مَنْ خَسَفْنَا
بِهِ الْاَرْضَ وَمِنْهُمْ مَنْ اَغْرَقْنَا وَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيَظْلِمَهُمْ
وَلٰكِنْ كَانُٓوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ ﴿٤٠﴾ مَثَلُ الَّذِينَ
اتَّخَذُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَوْلِيَٓاءَ كَمَثَلِ الْعَنْكَبُوتِ
اِتَّخَذَتْ بَيْتًا وَاِنَّ اَوْهَنَ الْبُيُوتِ لَبَيْتُ الْعَنْكَبُوتِ
لَوْ كَانُوا يَعْلَمُونَ ﴿٤١﴾ اِنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ مَا يَدْعُونَ
مِنْ دُونِهِ مِنْ شَيْءٍ وَهُوَ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ ﴿٤٢﴾ وَتِلْكَ
الْاَمْثَالُ نَضْرِبُهَا لِلنَّاسِ وَمَا يَعْقِلُهَٓا اِلَّا الْعَالِمُونَ ﴿٤٣﴾
خَلَقَ اللّٰهُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ بِالْحَقِّ اِنَّ فِي ذٰلِكَ
لَاٰيَةً لِلْمُؤْمِنِينَ ﴿٤٤﴾ اُتْلُ مَٓا اُوحِيَ اِلَيْكَ مِنَ الْكِتَابِ
وَاَقِمِ الصَّلٰوةَ اِنَّ الصَّلٰوةَ تَنْهٰى عَنِ الْفَحْشَٓاءِ وَالْمُنْكَرِ
وَلَذِكْرُ اللّٰهِ اَكْبَرُ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مَا تَصْنَعُونَ ﴿٤٥﴾

**39.** (Me) Qarûn û Firewn û Haman jî (helak kir). Sond be Mûsa ji wan re delîlên vikîvekirî anî. Li ser rûyê erdê quretî kirin. Lê ew nikarin bikevin pêşîya (ezabê) me (nikaribûn jê re bibin asteng).

**40.** Me her yekî ji wan bi gunehê wî girt. Me bi serê hin ji wana bahozeke ku keviran dibarîne şand. Bi hinan jî qîrînekî girt (ku guhan ker dike). Me hin ji wan jî binerd kirin. Hinan jî xeniqand. Allah zilim li wan nedikir, lê wan bixwe zilim li xwe dikirin.

**41.** Mîsala wan kesên ku ji xeynî Allah ji xwe re dost digirin, wekî rewşa pindepîrê ye ku ji xwe re hêlînê çêdike. Bêguman mala herî qels/pûç, mala pindepîrê ye. Xwezî bizanibûna.

(Ew kesên ku ji xeynî Allah (ac) hin heyînan dost digirin û hêvîdarê şefeat û himmet û alîkarîya wan in, bi vê awayê pişta xwe didin tiştekî herî qels. Hal ev e ku dostê/welîyê heq Allah e (ac). Lewre ew, Baqî ye; her tiştên ji xeynî wî fanî ye. Ew, bi hêz ê û qadirê mutleq e; her tiştên ji xeynî wî bêçar in/şikestî ne. Ew, ne muhtacê qet tu tiştekî ye; her tiştên ji xeynî wî feqîr û hewcedar in. Ew, ji her tiştî berztir/bilindtir e. Her tiştên ji xeynî wî jê re sitûxwar in û teslîmbûyî ne. Dev jê berdana esmaên xweşik û sifetên berz û xwesipartin û pêgirtina heyînên bêçar û qels, enceq karê wan însanan e ku ew ji nîmetên aqil û tewhîdê bêpar in. Wekî din bnr. 6/En'am, 14)

**42.** Bêguman Allah bi ew ên ku ji xeynî wî dûa ji wan (welîyan) re dikin, dizane. Ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**43.** Em van mîsalan didin însanan. Lê ji zanayan pê ve kes hiş di ber de nabe.

**44.** Allah, erd û esman bi heqî xuliqand. Bêguman di vêya de ji bo mumînan ayetek heye.

**45.** Wê Kitêba ku ji te re hatîye wehîykirin bixwîne û nimêja xwe rasterast bike. Bêguman nimêj, însan ji fuhşîyatê û ji munkeratê dide paş/diparêze. (Di muqabilê nimêjê de) zikirkirina we ya Allah (ku we zikir bike) herî mezintir e. Allah bi ya ku hûn dikin dizane.
(Bnr. 23/Mu'mînûn, 2)




وَلَا تُجَادِلُٓوا اَهْلَ الْكِتَابِ اِلَّا بِالَّت۪ي هِيَ اَحْسَنُۗ
اِلَّا الَّذ۪ينَ ظَلَمُوا مِنْهُمْ وَقُولُٓوا اٰمَنَّا بِالَّذ۪ٓي اُنْزِلَ
اِلَيْنَا وَاُنْزِلَ اِلَيْكُمْ وَاِلٰهُنَا وَاِلٰهُكُمْ وَاحِدٌ وَنَحْنُ لَهُ
مُسْلِمُونَ ﴿٤٦﴾ وَكَذٰلِكَ اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكَ الْكِتَابَۜ فَالَّذ۪ينَ
اٰتَيْنَاهُمُ الْكِتَابَ يُؤْمِنُونَ بِه۪ۚ وَمِنْ هٰٓؤُلَٓاءِ مَنْ يُؤْمِنُ
بِه۪ۜ وَمَا يَجْحَدُ بِاٰيَاتِنَٓا اِلَّا الْكَافِرُونَ ﴿٤٧﴾ وَمَا كُنْتَ
تَتْلُوا مِنْ قَبْلِه۪ مِنْ كِتَابٍ وَلَا تَخُطُّهُ بِيَم۪ينِكَ اِذًا
لَارْتَابَ الْمُبْطِلُونَ ﴿٤٨﴾ بَلْ هُوَ اٰيَاتٌ بَيِّنَاتٌ ف۪ي صُدُورِ الَّذ۪ينَ
اُو۫تُوا الْعِلْمَۜ وَمَا يَجْحَدُ بِاٰيَاتِنَٓا اِلَّا الظَّالِمُونَ ﴿٤٩﴾ وَقَالُوا
لَوْلَٓا اُنْزِلَ عَلَيْهِ اٰيَاتٌ مِنْ رَبِّه۪ۜ قُلْ اِنَّمَا الْاٰيَاتُ عِنْدَ اللّٰهِۜ
وَاِنَّمَٓا اَنَا۬ نَذ۪يرٌ مُب۪ينٌ ﴿٥٠﴾ اَوَلَمْ يَكْفِهِمْ اَنَّٓا اَنْزَلْنَا عَلَيْكَ
الْكِتَابَ يُتْلٰى عَلَيْهِمْۜ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَرَحْمَةً وَذِكْرٰى
لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٥١﴾ قُلْ كَفٰى بِاللّٰهِ بَيْن۪ي وَبَيْنَكُمْ
شَه۪يدًاۚ يَعْلَمُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
بِالْبَاطِلِ وَكَفَرُوا بِاللّٰهِۙ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿٥٢﴾

**46.** Ji nav wan ew ên zalim ne tê de, bi Ehlê Kitêb re bi awayekî herî xweşik nîqaş bikin. Bibêjin: “Em bi ya ku ji me nazil bûye û ji we re nazil bûye re îman tînin. Îlâhê me û îlâhê we yek e û em kesên teslîmbûyîyê wî ne.”

**47.** (Çawa ku me ji wan re Kitêb daxistîye) me ji te re jî Kitêb nazil kir. Ew ên ku berê de me Kitêb dabû wan, îman bi wê (Qur'anê) tînin. Di nav wan (Mekkîyan) de jî yên ku îman anîne hene. Ji xeynî kafiran tu kes ayetên me înkar nake.

**48.** Tu berê de ne xwendevanê Kitêb bûyî. Bi rastî te bi destê xwe yê rastê jî nedinivîsand. (Eger wisan bûya) wê ehlê batil wê demê biketibana gumanê.

**49.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî ew (Qur'an), di singên wan ên ku ilim ji wan re hatîye dayîn de ayetên vikîvekirî ne. Ji zaliman pê ve kesên din ayetên me înkar nakin.

**50.** Gotin: “Ma ne hewce bû ku ji Rabbê wî ayetek/mucîzeyek jê re bihatibana?” Bibêje: “Ayet, enceq li îndallah/li cem Allah in. Û ez bitenê hişyarkerekî eşkere me.”

**51.** Kitêba ku me ji te re nazil kiriye û ji wan re tê xwendin ma qey têra wan nake? Bêguman di vê de ji bo civakeke ku îman anîye rahmet û şîret heye.

**52.** Bibêje: “Di navbera min û we de wek şahid Allah bes e. Çi tiştên li erd û esmanan hebe bi hemûyan dizane. Ew ên bawerî bi batil tînin û ji Allah re dibin kafir, yên ku xisirîne ha ew bixwe ne.

وَيَسْتَعْجِلُونَكَ بِالْعَذَابِۜ وَلَوْلَٓا اَجَلٌ مُسَمًّى لَجَٓاءَهُمُ الْعَذَابُۜ
وَلَيَأْتِيَنَّهُمْ بَغْتَةً وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٥٣﴾ يَسْتَعْجِلُونَكَ بِالْعَذَابِۜ
وَاِنَّ جَهَنَّمَ لَمُحٖيطَةٌ بِالْكَافِرٖينَۙ ﴿٥٤﴾ يَوْمَ يَغْشٰيهُمُ الْعَذَابُ
مِنْ فَوْقِهِمْ وَمِنْ تَحْتِ اَرْجُلِهِمْ وَيَقُولُ ذُوقُوا مَا كُنْتُمْ
تَعْمَلُونَ ﴿٥٥﴾ يَا عِبَادِيَ الَّذٖينَ اٰمَنُٓوا اِنَّ اَرْضٖي وَاسِعَةٌ فَاِيَّايَ
فَاعْبُدُونِ ﴿٥٦﴾ كُلُّ نَفْسٍ ذَٓائِقَةُ الْمَوْتِ ثُمَّ اِلَيْنَا تُرْجَعُونَ ﴿٥٧﴾
وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَنُبَوِّئَنَّهُمْ مِنَ الْجَنَّةِ غُرَفًا
تَجْرٖي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِدٖينَ فٖيهَاۜ نِعْمَ اَجْرُ الْعَامِلٖينَۗ ﴿٥٨﴾
اَلَّذٖينَ صَبَرُوا وَعَلٰى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ ﴿٥٩﴾ وَكَاَيِّنْ مِنْ دَٓابَّةٍ
لَا تَحْمِلُ رِزْقَهَاۗ اَللّٰهُ يَرْزُقُهَا وَاِيَّاكُمْۘ وَهُوَ السَّمٖيعُ الْعَلٖيمُ ﴿٦٠﴾
وَلَئِنْ سَاَلْتَهُمْ مَنْ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَسَخَّرَ الشَّمْسَ
وَالْقَمَرَ لَيَقُولُنَّ اللّٰهُۚ فَاَنّٰى يُؤْفَكُونَ ﴿٦١﴾ اَللّٰهُ يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ
يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِهٖ وَيَقْدِرُ لَهُۜ اِنَّ اللّٰهَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلٖيمٌ ﴿٦٢﴾ وَلَئِنْ
سَاَلْتَهُمْ مَنْ نَزَّلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَاَحْيَا بِهِ الْاَرْضَ مِنْ بَعْدِ
مَوْتِهَا لَيَقُولُنَّ اللّٰهُۜ قُلِ الْحَمْدُ لِلّٰهِۜ بَلْ اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْقِلُونَ ﴿٦٣﴾

**53.** Ew ji te bi lezgînî ezab dixwazin. Eger demeke diyarkirî nebûna helbet ezab wê bihatibûna serê wan. Sond be, wê ew di rewşeke ku haya wan jê tune wê ji nîşka ve ji wan re were.

**54.** Ew ji te bi lezgînî ezab dixwazin. Qet guman tune ku cehennem, kafiran ji her alî ve dorpêç kiriye.

**55.** Wê roja ku ezab di ser wan de û di bin lingên wan de dor li wan bigire û wan binixumîne wê Allah wiha ferman bike: “(Di muqabilê) kar û kirinên xwe de (ezabê) bitamînin.”

**56.** Gelî evdên min ên îman anîne! Bêguman erdê min fireh e. Êdî (ji cihê ku hûn nikarin dînê xwe bijîn hîcret bikin û) bitenê ji min re îbadet/evdîtî bikin.

**57.** Her nefs/her can wê mirinê tam bike/biçêje. Paşê hûn ê bi bal me de bên vegerandin.

**58.** Ew ên îman anîne û amelên salih kirine, em ê wan têxin xurfeyên/odeyên (ji bo mêvanên taybet hatine amadekirin) ku di binê wan de çem diherikin û di wan de wê bêdawî bimînin. Mikafata kesên amel (ên salih) kirine çiqas xweşik e.

**59.** Ew in ku; sebir dikin û bitenê tewekkulê Rabbê xwe dikin.

**60.** Gelek jîndar/candar hene ku rizqê xwe nakişînin/hilnagirin. Ew ê ku we jî wan jî dirizqîne Allah e. Ew (yê ku hemû tiştan dibihîze) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**61.** Eger tu ji wan bipirsi: “Kî erd û esmanan xuliqandîye û ew ê roj û hîv ji emrê xwe re amade kiriye kî ye?” muheqeq wê bibêjin: “Allah!” Herwiha çawa dibe ku (ji tewhîdê bi bal şirkê ve) tên vegerandin?

**62.** Allah, ji evdên xwe ji kî re bixwaze rizqê wî fireh dike (û ji kî re jî bixwaze) teng dike. Bêguman Allah, zanayê her tiştî ye.

**63.** Eger tu ji wan bipirsi: “Kî ji esman av dadixîne û ew ê piştî mirina wê heyat/hêşînahî dide ser rûyê erdê?” muheqeq wê bibêjin: “Allah!” Bibêje: “Hamd, ji Allah re ye.” Berevajî, pirên wan aqil nagirin.

(Kesê muşrîk, her çiqas îdîaya îmana bi Allah (ac) bike jî îmana wî betal e. Ji bo îzaha berfirehî bnr. 23/Mu’mînûn, 84-90)

وَمَا هٰذِهِ الْحَيٰوةُ الدُّنْيَٓا اِلَّا لَهْوٌ وَلَعِبٌۜ وَاِنَّ الدَّارَ الْاٰخِرَةَ
لَهِيَ الْحَيَوَانُۢ لَوْ كَانُوا يَعْلَمُونَ ﴿٦٤﴾ فَاِذَا رَكِبُوا فِي الْفُلْكِ
دَعَوُا اللّٰهَ مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَۚ فَلَمَّا نَجّٰيهُمْ اِلَى الْبَرِّ اِذَا هُمْ
يُشْرِكُونَۙ ﴿٦٥﴾ لِيَكْفُرُوا بِمَٓا اٰتَيْنَاهُمْۚ وَلِيَتَمَتَّعُواۗ فَسَوْفَ
يَعْلَمُونَ ﴿٦٦﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا اَنَّا جَعَلْنَا حَرَمًا اٰمِنًا وَيُتَخَطَّفُ النَّاسُ
مِنْ حَوْلِهِمْۜ اَفَبِالْبَاطِلِ يُؤْمِنُونَ وَبِنِعْمَةِ اللّٰهِ يَكْفُرُونَ ﴿٦٧﴾
وَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنِ افْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا اَوْ كَذَّبَ بِالْحَقِّ
لَمَّا جَٓاءَهُۜ اَلَيْسَ فِي جَهَنَّمَ مَثْوًى لِلْكَافِرِينَ ﴿٦٨﴾ وَالَّذِينَ
جَاهَدُوا فِينَا لَنَهْدِيَنَّهُمْ سُبُلَنَاۜ وَاِنَّ اللّٰهَ لَمَعَ الْمُحْسِنِينَ ﴿٦٩﴾

سُورَةُ الرُّومِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سِتُّونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
الٓمّٓ ﴿١﴾ غُلِبَتِ الرُّومُۙ ﴿٢﴾ فِٓي اَدْنَى الْاَرْضِ وَهُمْ مِنْ بَعْدِ غَلَبِهِمْ
سَيَغْلِبُونَۙ ﴿٣﴾ فِي بِضْعِ سِنِينَۜ لِلّٰهِ الْاَمْرُ مِنْ قَبْلُ وَمِنْ بَعْدُۜ وَيَوْمَئِذٍ يَفْرَحُ
الْمُؤْمِنُونَۙ ﴿٤﴾ بِنَصْرِ اللّٰهِۜ يَنْصُرُ مَنْ يَشَٓاءُۜ وَهُوَ الْعَزِيزُ الرَّحِيمُ ﴿٥﴾

**64.** Jiyana vê dinyayê, ji şahî û lîstikê pê ve ne tiştekî din e. Jiyan (a esil û ya bêdawî), jiyana axîretê ye. Xwezî bizanibûna.

**65.** Dema ku ew li keştîyê siwar dibin, dîn ji Allah re xalis dikin (bê şirîk çêkirin) bi dilekî safî ji Allah re dûa dikin. Dema ku wan xelas dike û bi silametî derdixîne bejîyê, (tu dibînî ku) di heman demê de şirîkan çêdikin.

**66.** Bila ew nîmetên ku me daye wan înkar bikin û kêfa xwe bikin (em binêrin)! Di demekî pir nêz de wê bibînin/fêm bikin.

**67.** Ma qey ew nabînin digel ku însanên li derdora wan (bi çûr û talanê) tên birin û pê ve diçin jî me ew der (Mekkeyê) kiriye cihekî pîroz û ewledar? Hê jî bi batilê îman tînin û nîmetên Allah înkar dikin?

**68.** Ji wî kesê ku li ser Allah derewan li hev tîne û bêbextîyan dike an jî dema heq jê re bê ew biderewîne zalimtir kî heye? Erê ma ji bo kafiran di cehennemê de cih tune?

**69.** Ew ên di rêya me de cîhadê dikin, helbet em ê rêyên xwe (yên herî rast) nîşanî wan bidin. Bêguman Allah bi muhsînan/ew ên ku evdîtîya xwe herî xweşik teqdîm dikin re ye.

(Bnr. 29/Ankebût, 6)



## 30. SÛREYA RÛM

*(Sûreya Rûm, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û şêst (60) ayet e. )*

*Di Qur'anê de sûreya sihemîn e. Sûreya Rûm, navê xwe ji peyva "Rûm" distîne. Peyva Rûm, ji bo danasîna Împaratorîya Roma ya Rojhilat û hemwelatîyên wî dihat bikaranîn. Di vê sûreyê de şerên di navbera Împaratorîya (Bîzans) Roma (yên ehle Kitêb) û Împaratorîya Sasanîyan (yên Mecûsî) ku di rojhilata navîn de diqewimîn û encama wan şeran vedibêje. Ji xeynî vê behsa rewşên qiyametê dike û mijarên ku îşareta qûdret û wehdanîyeta Allah (ac) dikin û helwestên muşrîkên Mekkeyê ya li dij îslamê bi neyînî/menfî vedibêje.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Elif, Lâm, Mîm.

**2.** Rûm mexlûb bûn.

**3.** Li cihekî nêz. (Lê belê) ew piştî vê mexlûbîyeta xwe wê serkevin/xalib bibin.

**4.** Di nava çend salan de... Berî (mexlûbîyeta Rûman) de jî û paşê jî emir/raye aîdê Allah e. Ew roj (a ku wê Rûm serkevin), wê mumîn kêfxweş/dilşad bibin.

**5.** Bi alîkarîya Allah... Ew ji kî re bivê alîkarîya wî dike. Ew (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

وَعْدَ اللّٰهِۜ لَا يُخْلِفُ اللّٰهُ وَعْدَهُ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ
لَا يَعْلَمُونَ ﴿٦﴾ يَعْلَمُونَ ظَاهِرًا مِنَ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۚ وَهُمْ
عَنِ الْاٰخِرَةِ هُمْ غَافِلُونَ ﴿٧﴾ اَوَلَمْ يَتَفَكَّرُوا ف۪ٓي اَنْفُسِهِمْ
مَا خَلَقَ اللّٰهُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَٓا اِلَّا بِالْحَقِّ وَاَجَلٍ
مُسَمًّىۜ وَاِنَّ كَث۪يرًا مِنَ النَّاسِ بِلِقَٓائِ رَبِّهِمْ لَكَافِرُونَ ﴿٨﴾
اَوَلَمْ يَس۪يرُوا فِي الْاَرْضِ فَيَنْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ
الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْۜ كَانُٓوا اَشَدَّ مِنْهُمْ قُوَّةً وَاَثَارُوا الْاَرْضَ
وَعَمَرُوهَٓا اَكْثَرَ مِمَّا عَمَرُوهَا وَجَٓاءَتْهُمْ رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِۜ
فَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيَظْلِمَهُمْ وَلٰكِنْ كَانُٓوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَۜ ﴿٩﴾
ثُمَّ كَانَ عَاقِبَةَ الَّذ۪ينَ اَسَٓاؤُ۫ا السُّٓوٰٓى اَنْ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِ اللّٰهِ
وَكَانُوا بِهَا يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿١٠﴾ اَللّٰهُ يَبْدَؤُا الْخَلْقَ ثُمَّ يُع۪يدُهُ
ثُمَّ اِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿١١﴾ وَيَوْمَ تَقُومُ السَّاعَةُ يُبْلِسُ الْمُجْرِمُونَ ﴿١٢﴾
وَلَمْ يَكُنْ لَهُمْ مِنْ شُرَكَٓائِهِمْ شُفَعٰٓؤُ۬ا وَكَانُوا بِشُرَكَٓائِهِمْ
كَافِر۪ينَ ﴿١٣﴾ وَيَوْمَ تَقُومُ السَّاعَةُ يَوْمَئِذٍ يَتَفَرَّقُونَ ﴿١٤﴾
فَاَمَّا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ فَهُمْ ف۪ي رَوْضَةٍ يُحْبَرُونَ ﴿١٥﴾

**6.** (Ev,) weada Allah e. Allah ji weada xwe navegere, lê belê pirên însanan nizanin.

**7.** Ew, ji heyata dinyayê bitenê ya xuyaye dizanin. Ji axîretê jî di xefletê de ne.

**8.** Ew, xwe bixwe nafikirin (û li ser vê heqîqetê tênagihîjin)? Allah; esmanan û erd û tiştên di navbera wan de bitenê ji bo qayîmbûna heqê û ji bo demeke diyar xuliqandîye. Bêguman pirên însanan, leqayîhatina Rabbê xwe înkar dikin.

**9.** Ma ew li ser rûyê erdê nagerin ku binêrin ka aqûbeta yên berîya wan (jîyîne) çawa bûye? Ew (ên berê de jîyîne), ji wan herî zêde xurttir bûn. Erd serûbinî hev kiribûn (û çandinî/dexil diçandin û sitargehan çêdikirin û zengînîyên binerd derdixistin). Ji avakirîyên wan hê zêdetir avahîyan çêkiribûn. Pêxemberên wan bi delîlên eşkere ji wan re hatibûn. (Ev tiştên hanê bi tevahî ew ji ezabê Allah xelas nekir.) Allah, zilim li wan nedikir. Lê belê, (bi şirîk çêkirina ji Allah re û bi derewandina pêxemberan) wan bixwe zilim li xwe dikirin.

**10.** Paşê aqûbeta xeraban, bû herî xerabtirê aqûbetan. Ayetên Allah derewandin û tinazên xwe pê kirin. (An jî; "Ji ber derewandin û tinazkarîya ayetan bi aqûbeta herî xerab ve ketin.")

**11.** Allah destpêka xuliqandinê dike, paşê (bi vejandinê) wê dubare dike. Piştre hûn bi bal wî ve tên vegerandin.

**12.** Roja ku wê qiyamet rabe, hemû gunehkarên mucrîm/sûcdar bêhêvî dimînin.

**13.** Qet tu şirîkên ku (ji Allah re) çêdikirin ji bo wan nabin şefaetvan û hetanî ew bixwe wê şirîkên xwe înkar bikin.

**14.** Roja ku qiyamet radibe, ha ew roj (kesên muwehhîd û yên muşrîk) ji hevdû vediqetin.

**15.** Ew ên îman anîne û amelên salih kirine jî wê di nav bexçeyeke cennetê de bên hewandin û naîlî îkramê dibin.

وَاَمَّا الَّذٖينَ كَفَرُوا وَكَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَلِقَٓائِ الْاٰخِرَةِ
فَاُو۬لٰٓئِكَ فِي الْعَذَابِ مُحْضَرُونَ ١٦ فَسُبْحَانَ اللّٰهِ حٖينَ
تُمْسُونَ وَحٖينَ تُصْبِحُونَ ١٧ وَلَهُ الْحَمْدُ فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ وَعَشِيًّا وَحٖينَ تُظْهِرُونَ ١٨ يُخْرِجُ الْحَيَّ مِنَ الْمَيِّتِ
وَيُخْرِجُ الْمَيِّتَ مِنَ الْحَيِّ وَيُحْيِي الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَاۜ
وَكَذٰلِكَ تُخْرَجُونَ ١٩ وَمِنْ اٰيَاتِهٖٓ اَنْ خَلَقَكُمْ مِنْ تُرَابٍ
ثُمَّ اِذَٓا اَنْتُمْ بَشَرٌ تَنْتَشِرُونَ ٢٠ وَمِنْ اٰيَاتِهٖٓ اَنْ خَلَقَ لَكُمْ
مِنْ اَنْفُسِكُمْ اَزْوَاجًا لِتَسْكُنُٓوا اِلَيْهَا وَجَعَلَ بَيْنَكُمْ
مَوَدَّةً وَرَحْمَةًۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ ٢١
وَمِنْ اٰيَاتِهٖ خَلْقُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَاخْتِلَافُ اَلْسِنَتِكُمْ
وَاَلْوَانِكُمْۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِلْعَالِمٖينَ ٢٢ وَمِنْ اٰيَاتِهٖ
مَنَامُكُمْ بِالَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَابْتِغَٓاؤُ۬كُمْ مِنْ فَضْلِهٖۜ
اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَسْمَعُونَ ٢٣ وَمِنْ اٰيَاتِهٖ يُرٖيكُمُ
الْبَرْقَ خَوْفًا وَطَمَعًا وَيُنَزِّلُ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَيُحْيٖ بِهِ
الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَاۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ٢٤

**16.** Ew ên ayetên me û leqayîhatina axîretê înkar kirine û derewandine, ha ew ji bo ezabê tên amadekirin.

**17.** (Herwiha) ber êvarê û destê sibehê Allah tesbîh bikin.

**18.** Li erd û esmanan hemd aîdê wî ye. Di dawîya rojê de û dema nîvro de jî (wî tesbîh bikin).

**19.** (Ew) yê sax ji yê mirî derdixe û yê mirî jî ji yê sax derdixe. Piştî mirina wî, heyat dide erdê. Hûn ê jî ha wisan (ji gorên xwe) bên derxistin.

**20.** Xuliqandina we ya ji axê û paşê (bi zêdebûna) wek însan belavbûna we jî ji ayetên wî ne (ku dibe delîlê qudret û ezameta wî).

**21.** Ji bo ku hûn sekînetê bibînin (bigihîjin hedanê) xuliqandina wî ya hevjînên ji nefsên we û pêkanîna hezkirin û merhameta di navbera we de jî ji ayetên wî ne. Bêguman di vêya de ji bo qewmekî difikire re ayet hene.

**22.** Xuliqandina erd û esmanan û ji hev cudabûna ziman û rêngên we jî ji ayetên wî ne. Bêguman di vêya de ji bo zanayan ayet hene.

**23.** Di şevê de razana/raketina we û di rojê de (ji bo rizqê xwe) gera we ya ji lutf û kerema wî jî ji ayetên wî ne. Bêguman di vêya de ji bo qewmekî bihîstkar re ayet hene.

**24.** Nîşandina birûskê ya ku nîşanî we dide (û dibe sebebê) tirs û hêvîyê û daxistina avê ku ji esman dadixîne û heyat dayîna wî ya ser rûyê erdê ku piştî mirina wî bi wê (avê) heyat didê jî ji ayetên wî ne. Bêguman di vêya de ji bo qewmekî aqilmend re ayet hene.

وَمِنْ اٰيَاتِه۪ٓ اَنْ تَقُومَ السَّمَٓاءُ وَالْاَرْضُ بِاَمْرِه۪ۜ ثُمَّ اِذَا دَعَاكُمْ
دَعْوَةً مِنَ الْاَرْضِ اِذَٓا اَنْتُمْ تَخْرُجُونَ ﴿٢٥﴾ وَلَهُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِۜ كُلٌّ لَهُ قَانِتُونَ ﴿٢٦﴾ وَهُوَ الَّذ۪ي يَبْدَؤُا الْخَلْقَ ثُمَّ
يُع۪يدُهُ وَهُوَ اَهْوَنُ عَلَيْهِۜ وَلَهُ الْمَثَلُ الْاَعْلٰى فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِۚ وَهُوَ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُ ﴿٢٧﴾ ضَرَبَ لَكُمْ مَثَلًا
مِنْ اَنْفُسِكُمْۜ هَلْ لَكُمْ مِنْ مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْ
مِنْ شُرَكَٓاءَ ف۪ي مَا رَزَقْنَاكُمْ فَاَنْتُمْ ف۪يهِ سَوَٓاءٌ تَخَافُونَهُمْ
كَخ۪يفَتِكُمْ اَنْفُسَكُمْۜ كَذٰلِكَ نُفَصِّلُ الْاٰيَاتِ
لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ﴿٢٨﴾ بَلِ اتَّبَعَ الَّذ۪ينَ ظَلَمُٓوا اَهْوَٓاءَهُمْ بِغَيْرِ عِلْمٍۚ
فَمَنْ يَهْد۪ي مَنْ اَضَلَّ اللّٰهُۜ وَمَا لَهُمْ مِنْ نَاصِر۪ينَ ﴿٢٩﴾ فَاَقِمْ
وَجْهَكَ لِلدّ۪ينِ حَن۪يفًاۜ فِطْرَتَ اللّٰهِ الَّت۪ي فَطَرَ النَّاسَ عَلَيْهَاۜ
لَا تَبْد۪يلَ لِخَلْقِ اللّٰهِۜ ذٰلِكَ الدّ۪ينُ الْقَيِّمُۙ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ
النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَۙ ﴿٣٠﴾ مُن۪يب۪ينَ اِلَيْهِ وَاتَّقُوهُ وَاَق۪يمُوا الصَّلٰوةَ
وَلَا تَكُونُوا مِنَ الْمُشْرِك۪ينَۙ ﴿٣١﴾ مِنَ الَّذ۪ينَ فَرَّقُوا د۪ينَهُمْ
وَكَانُوا شِيَعًاۜ كُلُّ حِزْبٍ بِمَا لَدَيْهِمْ فَرِحُونَ ﴿٣٢﴾

**25.** Qayîmbûna erd û esman jî ji ayetên wî ne. Paşê dema ku ji erdê (bi pifkirina Sûrê) bi bangekî gazî we dike hûn hema/aniha (ji gorên xwe) derdikevin.

**26.** Li erd û esmanan çi hebin bitemamî aîdê Allah in. Hemû teslîmê wî bûne û jê re sitûxwar in.

**27.** Ew ê ku cara pêşîn dixuliqîne û paşê (bi vejandinê) dubare bike ew e. Ew (vejandina ji nû ve ji xuliqandina cara pêşîn) herî hêsantir e. Li erd û esmanan sifeta herî berz aîdê wî ye. Ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**28.** (Ji bo ku hûn tewhîd û şirkê fêm bikin) ji nefsa we bixwe mîsalek da we: Di nav wan koleyên we de; yên di rizqê ku em didin we de hevpar in an wekî ku ji hevdu ditirsin hûn ji wan ditirsin an jî ên ku bi we re wekhev in, hene gelo? Ha bi vê awayê em ayetan ji bo qewmekî aqilmend re rave dikin.

(Digel ku hûn xwe bi koleyên xwe re wekhev nabînin û di malên xwe de wek şirîk nagirin û çawa rûmetê didin hevdu hûn gûh nadin wan, ka çawa çêdibe heyînên ku Allah (ac) xuliqandîye li îndallah/li cem Allah wek şefaetvan û şîfakar û himmetkar û zerar def dike dipejirînin û wan di mulkê Allah (ac) de dikin şirîk? Ew îbadetên weke dûa û qurban û nezir û tobê jî wekî ku şirîkê Allah (ac) in hûn radibin teqdîmê wan dikin. Ew tiştên ku hûn qîma xwe pê naynin, çawa dibe ku hûn ji bo Allah (ac) bi wan razî dibin? (Bnr.16/Nahl, 71) Ji bo hikmetên ku Qur'ana Kerîm Kitêbeke mufesselbûyî/kitekitbûyî ye, bnr. 6/En'âm, 55.)

**29.** (Nexêr, ne wisan e!) Ew ên zilimkar, beyî sipartina qet tu agahîyê didin pey hewayên/hewesên xwe. Kesê ku Allah ew xerifandibe kî dikare wî bigihîjîne hîdayetê? Qet tu alîkarên wan jî tunin.

**30.** Rûyê xwe wek (muwehhîdê ku qet tu tiştî ji Allah re şirîk çênakin) vegerîne dînê henîf. (Bide pey) wê fitreta ku Allah însanan li ser xuliqandîye. Di xuliqandina Allah de guherandin tune. (Herkesî li ser fitreta tewhîdê xuliqandîye.) Ha dînê rasterast ev e. Lê belê pirên însanan nizanin.




(Tewhîd/îslâm ya ku tê ser maneya îbadeta bitenê ji Allah (ac) re û şirîk neçêkirina jê re, agahî û meyleke/dilxwazîyeke di fitreta însan de bicihbûyî ye. Her însan, li ser vê fitretê tê dinyayê. Ji însanan hin kes didin pey van delîlên fitrî û hetanî ku di dewrên tu pêxember nehatine de jî li ser tewhîdê ji Allah (ac) re evdîtîyê dikin. Wekî mîsala Zeyd b. Amr b. Nufeyl. (Bnr. Buxarî, 3826, 3828) Hin kes jî nadin pey vê agahîya fitrî û bawerîyeke spartîyê zen û xurafe û bi rawêj û bi kevneşopî û bi adetan xweyî dibe pêk tînin. (Bnr. 7/A'raf, 172-173; 28/Qasas, 46))

**31.** Hûn bibin ji munîban/ji wan ên ku berê xwe dane wî (Allah). Jê bitirsin û xwe biparêzin. Nimêja xwe rasterast bikin û nebin ji muşrîkan.

**32.** (Ew muşrîk in ku) dînê xwe kirine parçe û ew bixwe jî kom bi kom ji hev veqetîyane. Her komek bi ya li cem xwe re kêfxweş dibe û pesnê xwe dide.

(Li ser mijara çawanîya parçekirina dîn bnr. 23/Mu'mînûn, 53.)

وَاِذَا مَسَّ النَّاسَ ضُرٌّ دَعَوْا رَبَّهُمْ مُنِيبِينَ اِلَيْهِ ثُمَّ اِذَآ اَذَاقَهُمْ
مِنْهُ رَحْمَةً اِذَا فَرِيقٌ مِنْهُمْ بِرَبِّهِمْ يُشْرِكُونَ ﴿٣٣﴾ لِيَكْفُرُوا
بِمَآ اٰتَيْنَاهُمْ فَتَمَتَّعُوا فَسَوْفَ تَعْلَمُونَ ﴿٣٤﴾ اَمْ اَنْزَلْنَا عَلَيْهِمْ
سُلْطَانًا فَهُوَ يَتَكَلَّمُ بِمَا كَانُوا بِهِ يُشْرِكُونَ ﴿٣٥﴾ وَاِذَآ اَذَقْنَا
النَّاسَ رَحْمَةً فَرِحُوا بِهَا وَاِنْ تُصِبْهُمْ سَيِّئَةٌ بِمَا قَدَّمَتْ
اَيْدِيهِمْ اِذَا هُمْ يَقْنَطُونَ ﴿٣٦﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا اَنَّ اللّٰهَ يَبْسُطُ الرِّزْقَ
لِمَنْ يَشَآءُ وَيَقْدِرُ اِنَّ فِي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٣٧﴾ فَاٰتِ
ذَا الْقُرْبٰى حَقَّهُ وَالْمِسْكِينَ وَابْنَ السَّبِيلِ ذٰلِكَ خَيْرٌ لِلَّذِينَ
يُرِيدُونَ وَجْهَ اللّٰهِ وَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٣٨﴾ وَمَآ اٰتَيْتُمْ
مِنْ رِبًا لِيَرْبُوَا فِٓي اَمْوَالِ النَّاسِ فَلَا يَرْبُوا عِنْدَ اللّٰهِ وَمَآ اٰتَيْتُمْ
مِنْ زَكٰوةٍ تُرِيدُونَ وَجْهَ اللّٰهِ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْمُضْعِفُونَ ﴿٣٩﴾ اَللّٰهُ
الَّذِي خَلَقَكُمْ ثُمَّ رَزَقَكُمْ ثُمَّ يُمِيتُكُمْ ثُمَّ يُحْيِيكُمْ
هَلْ مِنْ شُرَكَٓائِكُمْ مَنْ يَفْعَلُ مِنْ ذٰلِكُمْ مِنْ شَيْءٍ سُبْحَانَهُ وَتَعَالٰى
عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٤٠﴾ ظَهَرَ الْفَسَادُ فِي الْبَرِّ وَالْبَحْرِ بِمَا كَسَبَتْ
اَيْدِي النَّاسِ لِيُذِيقَهُمْ بَعْضَ الَّذِي عَمِلُوا لَعَلَّهُمْ يَرْجِعُونَ ﴿٤١﴾

**33.** Dema ku tengezarîyek digihîje însanan, ber bi Rabbê xwe ve difetilin û dûa/lavahî jê dikin. Paşê dema ku (tengezarîya wan diborîne û) ji alî xwe ve rahmetekê bi wan dide tamkirin, (tu dibînî ku) komek ji nav wan hema ji Rabbê xwe re dest bi şirîk çêkirinê kirine jî.

**34.** (Bi şirîk çêkirinê) nankorîyê (ji nîmetên) ku me dane wan re dikin. Xweş bijîn! Pir di nêz de hûn ê bizanibin/fêm bikin.

(Li ser mijara ku şirk nankorîtî bixwe ye bnr. 16/Nahl, 83)

**35.** Yan jî qey me ji wan re delîleke qethî daxistîye û ew emir li wan dike ku şirîk çekin?

**36.** Dema em rahmetekê bi însanan didin tamkirin pê kêfxweş dibin (û rûdîtî/şaqizî dibin). Dema ji ber tiştên bi destên xwe teqdîm kirine musîbetek were serê wan hema/aniha bêhêvî dimînin.

**37.** Ma qey nedîtin ku Allah ji kî re bixwaze rizqê wî fireh dike (û ji kî re jî bixwaze) teng dike? Bêguman di vêya de ji bo civakeke mumîn re ayetên (ku delaletê ilim û hikmeta Allah dike) hene.

**38.** Nexwe tu heqê eqrabeyan û yê miskîn/belengaz û rêwîyê ku di rê de maye bide. Ji bo wan ên ku razîbûna Allah hêvî dikin re ev, herî bixêrtir e. Ew ên digihîjin xelasîyê jî ha ev in.

**39.** Ew malê hûn bi riba didin da ku malên însanan zêde bibe, li îndallah/li cem Allah zêde nabe. Ew zekâta ku hûn bi hêvîya razîbûna Allah didin jî ew ên qat bi qat wê bên zêdekirin ha ev in.

**40.** Allah, hûn xuliqandîye paşê riziq daye we; paşê we dimirîne û piştre jî we ji nû ve vedijîne. Di nava şirîkên we de kesekî ku ji van yekî jî bikaribe bike heye? Ew (Allah), ji tiştên ku pê şirîk çêdikin berz û berî ye.

**41.** Ji ber karên (gunehên) ku însanan bi dest xistine, di behr û berîyê de fesat dest pê kir. (Allah) qismekî (cezayê) amelên wan bi wan dide tamkirin, dibe ku vegerin (îslâmê).

قُلْ سِيرُوا فِي الْاَرْضِ فَانْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الَّذِينَ مِنْ قَبْلُۜ
كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُشْرِكِينَ ﴿٤٢﴾ فَاَقِمْ وَجْهَكَ لِلدِّينِ الْقَيِّمِ
مِنْ قَبْلِ اَنْ يَاْتِيَ يَوْمٌ لَا مَرَدَّ لَهُ مِنَ اللّٰهِ يَوْمَئِذٍ يَصَّدَّعُونَ ﴿٤٣﴾
مَنْ كَفَرَ فَعَلَيْهِ كُفْرُهُۚ وَمَنْ عَمِلَ صَالِحًا فَلِاَنْفُسِهِمْ يَمْهَدُونَۙ ﴿٤٤﴾
لِيَجْزِيَ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ مِنْ فَضْلِهِۜ اِنَّهُ
لَا يُحِبُّ الْكَافِرِينَ ﴿٤٥﴾ وَمِنْ اٰيَاتِهِٓ اَنْ يُرْسِلَ الرِّيَاحَ مُبَشِّرَاتٍ
وَلِيُذِيقَكُمْ مِنْ رَحْمَتِهِ وَلِتَجْرِيَ الْفُلْكُ بِاَمْرِهِ وَلِتَبْتَغُوا مِنْ
فَضْلِهِ وَلَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٤٦﴾ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ رُسُلًا
اِلٰى قَوْمِهِمْ فَجَٓاؤُ۫هُمْ بِالْبَيِّنَاتِ فَانْتَقَمْنَا مِنَ الَّذِينَ اَجْرَمُواۜ وَكَانَ
حَقًّا عَلَيْنَا نَصْرُ الْمُؤْمِنِينَ ﴿٤٧﴾ اَللّٰهُ الَّذِي يُرْسِلُ الرِّيَاحَ فَتُثِيرُ
سَحَابًا فَيَبْسُطُهُ فِي السَّمَٓاءِ كَيْفَ يَشَٓاءُ وَيَجْعَلُهُ كِسَفًا فَتَرَى
الْوَدْقَ يَخْرُجُ مِنْ خِلَالِهِۚ فَاِذَٓا اَصَابَ بِهِ مَنْ يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِهِٓ اِذَا
هُمْ يَسْتَبْشِرُونَ ﴿٤٨﴾ وَاِنْ كَانُوا مِنْ قَبْلِ اَنْ يُنَزَّلَ عَلَيْهِمْ مِنْ قَبْلِهِ
لَمُبْلِسِينَ ﴿٤٩﴾ فَانْظُرْ اِلٰٓى اٰثَارِ رَحْمَتِ اللّٰهِ كَيْفَ يُحْيِي الْاَرْضَ
بَعْدَ مَوْتِهَاۜ اِنَّ ذٰلِكَ لَمُحْيِي الْمَوْتٰىۚ وَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿٥٠﴾

**42.** Bibêje: “Li ser rûyê erdê bigerin û bibînin ka aqûbeta wan ên berî we çawa bûye (bibînin)? Piren wan muşrîk bûn.

(Ji bo tiştên ku Allah (ac) der heqê piranî/zehfayî û kêmjimarî/hindikayî de qotîye bnr. 11/Hûd, 40.)

**43.** (Herwiha) berî ew roja ku tiştê ji Allah tê û qet tu kes nikare vegerîne bê, rûyê xwe bi bal dînê rasterast ve vegerîne. Ew roj însan (wek cehennemî û cennetî) kom bi kom wê ji hevdu bên veqetandin.

**44.** Her kî berê xwe bide kufrê, di aleyha wî de ye. Kî jî amelê salih bike, êdî ew xwe ji bo (cihên xwe yê cennetê) amade dikin.

**45.** (Ev) ji bo ku (Allah) ji lutf û kerema xwe kesên îman anîne û amelên salih kirine sûdmend bike (wiha ye). Lewre Allah hez kafiran nake.

**46.** Ji bo ku ji rahmeta xwe bi we bide tamkirin bi fermana wî çûna keştîyan û ji bo ku hûn ji lutf û kerema wî ji xwe re bigerin wek mizgînî şandina bayê jî ji ayetên wî ne. Hêvî heye ku hûn şikur bikin.

**47.** Sond be, me berî te jî gelek pêxember ji qewmên wan re şandibûn. Ji wan re delîlên eşkere anîbûn. Me heyf/tol ji wan mucrîmên/sûcdarên gunehkar (ên li dij wan derdiketin) sitend. Alîkarîya mumînan li ser me heqek e.

**48.** Allah, bayê dişîne, (ba) ewran dilevîne û (Allah) ewran li esmanan li gor daxwaza xwe belav dike û wan parçe parçe dike. (Dawî de) tu dibînî ku baran ji nava (ewran) derdikeve û dibare. Ew, ji evdên xwe kî bivê (wê baranê) lê dibarîne û ew jî pê hema kêfxweş dibin.

**49.** Lê ew berî ku (baran) bibare, ji barîna baranê bêhêvî bûn.

**50.** Tu li berhemên rahmeta Allah binêre! Piştî mirina wê çawa heyat dide ser rûyê erdê? Bêguman ew (Allah), wê mirîyan jî bivejîne. Ew, li ser her tiştî qadir e.

وَلَئِنْ اَرْسَلْنَا رِيحًا فَرَاَوْهُ مُصْفَرًّا لَظَلُّوا مِنْ بَعْدِهٖ يَكْفُرُونَ ﴿٥١﴾
فَاِنَّكَ لَا تُسْمِعُ الْمَوْتٰى وَلَا تُسْمِعُ الصُّمَّ الدُّعَٓاءَ اِذَا وَلَّوْا
مُدْبِرٖينَ ﴿٥٢﴾ وَمَٓا اَنْتَ بِهَادِ الْعُمْيِ عَنْ ضَلَالَتِهِمْۜ اِنْ تُسْمِعُ
اِلَّا مَنْ يُؤْمِنُ بِاٰيَاتِنَا فَهُمْ مُسْلِمُونَ ﴿٥٣﴾ اَللّٰهُ الَّذٖى خَلَقَكُمْ
مِنْ ضَعْفٍ ثُمَّ جَعَلَ مِنْ بَعْدِ ضَعْفٍ قُوَّةً ثُمَّ جَعَلَ
مِنْ بَعْدِ قُوَّةٍ ضَعْفًا وَشَيْبَةًۜ يَخْلُقُ مَا يَشَٓاءُۚ وَهُوَ الْعَلٖيمُ الْقَدٖيرُ ﴿٥٤﴾
وَيَوْمَ تَقُومُ السَّاعَةُ يُقْسِمُ الْمُجْرِمُونَ مَا لَبِثُوا غَيْرَ سَاعَةٍۜ
كَذٰلِكَ كَانُوا يُؤْفَكُونَ ﴿٥٥﴾ وَقَالَ الَّذٖينَ اُو۫تُوا الْعِلْمَ
وَالْاٖيمَانَ لَقَدْ لَبِثْتُمْ فٖى كِتَابِ اللّٰهِ اِلٰى يَوْمِ الْبَعْثِۘ فَهٰذَا
يَوْمُ الْبَعْثِ وَلٰكِنَّكُمْ كُنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿٥٦﴾ فَيَوْمَئِذٍ
لَا يَنْفَعُ الَّذٖينَ ظَلَمُوا مَعْذِرَتُهُمْ وَلَا هُمْ يُسْتَعْتَبُونَ ﴿٥٧﴾ وَلَقَدْ
ضَرَبْنَا لِلنَّاسِ فٖى هٰذَا الْقُرْاٰنِ مِنْ كُلِّ مَثَلٍۜ وَلَئِنْ جِئْتَهُمْ
بِاٰيَةٍ لَيَقُولَنَّ الَّذٖينَ كَفَرُٓوا اِنْ اَنْتُمْ اِلَّا مُبْطِلُونَ ﴿٥٨﴾
كَذٰلِكَ يَطْبَعُ اللّٰهُ عَلٰى قُلُوبِ الَّذٖينَ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٥٩﴾ فَاصْبِرْ
اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّ وَلَا يَسْتَخِفَّنَّكَ الَّذٖينَ لَا يُوقِنُونَ ﴿٦٠﴾

**51.** Sond be, eger em bayê bişînin û wê (dexlê) zerikîn/zerbûyî bibînin paşê wê dîsa nankorîyê bikin.

**52.** Bêguman tu nikarî heqîyê bi wan (kafirên ku dişibin mirîyan) bidî sehkirin. Dema pişta xwe dane te û çûn bi yên (li dij heqîyê) ker in/nabihîzin re tu nikarî dawetê bidî bihîstin.

**53.** Û tu nikarî kesên kor ji rêşaşîyên wan (xelas bikî û) rê nîşanî wan bidî. Tu enceq bikaribî bi muslîman/ew evdên ku şirkê terk kirine û berê xwe bi tewhîdê dane Allah bidî sehkirin

**54.** Ew ê ku we ji zeîfîyê xuliqandîye û piştî zeîfîyê quwet daye we û piştî vê quwetê we digihîne zeîfî û ixtîyarîyê Allah e. Ew çi daxwaz bike dixuliqîne. Ew, (zanayê her tiştî) Alîm û (yê ku hêza wî digihîje her tiştî û xwedî qudreta mutleq) Qadîr e.

**55.** Roja qiyamet radibe ew gunehkarên mucrîm/sûcdar sond dixwin (û dibêjin:) “Em ji seatekî pê ve li (dinyayê) nemane.” Ew, ha wisan (ji rastîyê) tên vegerandin.

**56.** Ew ên ku ilim û îman ji wan re hatîye dayîn wiha dibêjin: “Sond be, hûn bi dirêjahîya dema nivîsandî (yanê,) heta roja ji nû ve vejandinê mane. Ha ev, roja vejandinê ye. Lê we pê nizanibû.”

**57.** Ew roj mazereta/hinceta zilimkaran feyde nade wan û (ji bo kirina amelên salih daxwaza wan a vegera dinyayê jî) nayê pejirandin/qebûl kirin.

**58.** Sond be, di vê Qur'anê de ji bo însanan me her cureya mîsalan daye. Eger tu ji wan re ayet/mucîze bînî, ew kafir teqez wê wiha bibêjin: “Hûn, ji wan kesan in ku batil lihev tînin.”

**59.** Allah, qelbê nezanan wiha mohr dike.

**60.** (Herwiha) sebir bike! Bêguman weada Allah heq e. Ew ên bi yeqînî îman neanîne bila te sewqê sistahîyê nekin.

سُورَةُ لُقْمٰنَ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ اَرْبَعٌ وَثَلَاثُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
الٓمٓ ﴿١﴾ تِلْكَ اٰيَاتُ الْكِتَابِ الْحَك۪يمِۙ ﴿٢﴾ هُدًى وَرَحْمَةً لِلْمُحْسِن۪ينَۙ ﴿٣﴾
اَلَّذ۪ينَ يُق۪يمُونَ الصَّلٰوةَ وَيُؤْتُونَ الزَّكٰوةَ وَهُمْ بِالْاٰخِرَةِ هُمْ
يُوقِنُونَؕ ﴿٤﴾ اُو۬لٰٓئِكَ عَلٰى هُدًى مِنْ رَبِّهِمْ وَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٥﴾
وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يَشْتَر۪ي لَهْوَ الْحَد۪يثِ لِيُضِلَّ عَنْ سَب۪يلِ اللّٰهِ
بِغَيْرِ عِلْمٍۗ وَيَتَّخِذَهَا هُزُوًاۜ اُو۬لٰٓئِكَ لَهُمْ عَذَابٌ مُه۪ينٌ ﴿٦﴾ وَاِذَا تُتْلٰى
عَلَيْهِ اٰيَاتُنَا وَلّٰى مُسْتَكْبِرًا كَاَنْ لَمْ يَسْمَعْهَا كَاَنَّ ف۪ٓي اُذُنَيْهِ وَقْرًاۚ
فَبَشِّرْهُ بِعَذَابٍ اَل۪يمٍ ﴿٧﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
لَهُمْ جَنَّاتُ النَّع۪يمِۙ ﴿٨﴾ خَالِد۪ينَ ف۪يهَاۜ وَعْدَ اللّٰهِ حَقًّاۜ وَهُوَ الْعَز۪يزُ
الْحَك۪يمُ ﴿٩﴾ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ بِغَيْرِ عَمَدٍ تَرَوْنَهَا وَاَلْقٰى فِي الْاَرْضِ
رَوَاسِيَ اَنْ تَم۪يدَ بِكُمْ وَبَثَّ ف۪يهَا مِنْ كُلِّ دَٓابَّةٍۜ وَاَنْزَلْنَا مِنَ السَّمَٓاءِ
مَٓاءً فَاَنْبَتْنَا ف۪يهَا مِنْ كُلِّ زَوْجٍ كَر۪يمٍ ﴿١٠﴾ هٰذَا خَلْقُ اللّٰهِ فَاَرُون۪ي
مَاذَا خَلَقَ الَّذ۪ينَ مِنْ دُونِه۪ۜ بَلِ الظَّالِمُونَ ف۪ي ضَلَالٍ مُب۪ينٍ ﴿١١﴾

## 31. SÛREYA LUQMAN

*(Sûreya Luqman, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sî û çar (34) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sî û yekemîn e. Di ayetên 12 û 19. de behsa Luqman û şîretên ku li kurê xwe dike tê kirin. Ji ber vê yekê ev sûre wek sûreya Luqman hatîye navandin. Herwisa mijarên tewhîd û pêxembertî û vejîna piştî mirinê û haşr vedibêje û şîreta amadebûyina ji roja qiyametê re hatîye kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Elif, Lâm, Mîm.

**2.** Ev, ayetên Kitêbeke xwedî hikum û hikmet e.

**3.** Ji muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin re hîdayet û rahmet e.

**4.** Ew (muhsîn) in ku nimêja xwe rasterast dikin û zekâta xwe didin û li ser yeqînê bi axîretê bawer in.

**5.** Ha evana, ji Rabbê xwe li ser hîdayetê ne û yên gihîştine xelasîyê jî her ew bixwe ne.

**6.** Ji însanan hin kes jî hene; ji bo ku binezanî ji rêya Allah vegerînin û tinazên xwe pê (bi ayetên wî) bikin peyva pûç distînin. Ha ji yên wisan re ezabekî riswaker heye.

**7.** Dema ku ayetên me jê re tên xwendin her wekî ku qet nebihîstibe û di guhê wî de giranî hebe quretîyê dike û rû vedigerîne. Tu mizgîna ezabekî biêş û jan bide wî.

**8.** Bêguman ji bo wan ên ku îman anîne û amelên salih kirine re, cennetên Naîm hene.

**9.** Ew ê di wir de ebedî bimînin. Weada Allah heq e. Ew (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**10.** Asîman bê sitûn xuliqandîyê. Hûn wê dibinin. Ji bo ku erd we nehejîne (li wê derê ji çiyan) qazixan çikandîye û ji her zindîyan li wir belav kiriye. Me ji esman av daxistîye û li wê derê ji her hêşînahîyên xweşik cot bi cot xuliqandîyê.

**11.** Ev xuliqandina Allah e. Ka nîşan bidin (em binêrin) ew (rohanîyetên ewlîya û şefaetvan û salih) ên ji xeynî wî (ku we îdîa dikir) çi xuliqandine? (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî kesên zilimkar di xerifîyeke vikîvekirî de ne.

وَلَقَدْ اٰتَيْنَا لُقْمٰنَ الْحِكْمَةَ اَنِ اشْكُرْ لِلّٰهِۜ وَمَنْ يَشْكُرْ
فَاِنَّمَا يَشْكُرُ لِنَفْسِه۪ۚ وَمَنْ كَفَرَ فَاِنَّ اللّٰهَ غَنِيٌّ حَم۪يدٌ ﴿١٢﴾
وَاِذْ قَالَ لُقْمٰنُ لِابْنِه۪ وَهُوَ يَعِظُهُ يَا بُنَيَّ لَا تُشْرِكْ بِاللّٰهِۜ
اِنَّ الشِّرْكَ لَظُلْمٌ عَظ۪يمٌ ﴿١٣﴾ وَوَصَّيْنَا الْاِنْسَانَ بِوَالِدَيْهِۚ حَمَلَتْهُ اُمُّهُ
وَهْنًا عَلٰى وَهْنٍ وَفِصَالُهُ ف۪ي عَامَيْنِ اَنِ اشْكُرْ ل۪ي وَلِوَالِدَيْكَۜ
اِلَيَّ الْمَص۪يرُ ﴿١٤﴾ وَاِنْ جَاهَدَاكَ عَلٰٓى اَنْ تُشْرِكَ ب۪ي مَا لَيْسَ لَكَ
بِه۪ عِلْمٌ فَلَا تُطِعْهُمَا وَصَاحِبْهُمَا فِي الدُّنْيَا مَعْرُوفًاۘ وَاتَّبِعْ سَب۪يلَ
مَنْ اَنَابَ اِلَيَّۚ ثُمَّ اِلَيَّ مَرْجِعُكُمْ فَاُنَبِّئُكُمْ بِمَا كُنْتُمْ
تَعْمَلُونَ ﴿١٥﴾ يَا بُنَيَّ اِنَّهَٓا اِنْ تَكُ مِثْقَالَ حَبَّةٍ مِنْ خَرْدَلٍ فَتَكُنْ
ف۪ي صَخْرَةٍ اَوْ فِي السَّمٰوَاتِ اَوْ فِي الْاَرْضِ يَأْتِ بِهَا اللّٰهُۜ اِنَّ اللّٰهَ
لَط۪يفٌ خَب۪يرٌ ﴿١٦﴾ يَا بُنَيَّ اَقِمِ الصَّلٰوةَ وَاْمُرْ بِالْمَعْرُوفِ وَانْهَ
عَنِ الْمُنْكَرِ وَاصْبِرْ عَلٰى مَٓا اَصَابَكَۜ اِنَّ ذٰلِكَ مِنْ عَزْمِ
الْاُمُورِۚ ﴿١٧﴾ وَلَا تُصَعِّرْ خَدَّكَ لِلنَّاسِ وَلَا تَمْشِ فِي الْاَرْضِ مَرَحًاۜ
اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ كُلَّ مُخْتَالٍ فَخُورٍۚ ﴿١٨﴾ وَاقْصِدْ ف۪ي مَشْيِكَ
وَاغْضُضْ مِنْ صَوْتِكَۜ اِنَّ اَنْكَرَ الْاَصْوَاتِ لَصَوْتُ الْحَم۪يرِ۟ ﴿١٩﴾

**12.** Sond be me hikmet dabû Luqman. (Ji ber nîmetên ku me dabûyê me wiha lê emir kir:) “Şikur bike.” Her kî şikur bike, wî ji bo xwe şikur kiriye. Kî jî nankorî bike bêguman Allah, (ew ê her tişt muhtacê wî ye lê ew ne hewcedarê tu kesî) Xaniy û (yê ku herî zêde hemd û pesinandinê heq dike û ji alîyê heyînan ve tê pesinandin) Hamîd e.

**13.** Dema ku Luqman şîret dida kurê xwe wiha gotibû: “Kurê min! Ji Allah re şirîkan çêneke! Bêguman şirk, zilmeke mezin e.”

(Ji bo tarîf û çeşîdên şirkê û ji bo aqubeta muşrîkan bnr. 4/Nîsa, 48.)

**14.** Ji bo dê û bavên wan me şîret li însan kir (da ku bi qencî bi wan re muamele bikin). Dêya wî ew bi gelek zehmetîyan hildigire û veqetana wî (ji şîr jî) di nav du salan de ye. Ji min re û ji dê û bavê xwe re şikur bikin. Veger bi bal min ve ye.

**15.** Di şirîk çêkirina ji min re tiştê ku zanîna te pê tune de eger te bidin zorê, îtaeta wan neke. (Lê) di dinyayê de bi wan re bi xweşî derbas bike. Bibe tabîê wî kesî ku berê xwe daye min! Paşê vegera we bi bal min ve ye û ya ku we dikir ez ê we pê agahdar bikim.

**16.** “Kurê min! Eger (amelê te) bi qasî heba/liba xerdelê be û ew di nav zinarekî de an li esmanan an jî di (kûrahîya) erdê de be jî Allah (roja qiyametê) wî tîne. Lewre Allah, (yê ku bi ilmê xwe nifûzê her tiştî dike û xwedî lutûf û îhsan) Latîf û (agahdarê her tiştî) Xabîr e.”

**17.** “Kurê min! Tu nimêja xwe rasterast bike û emrê qencîyê bike û ji xerabîyê re bibe asteng û li ser tiştê u tê serê te sebir bike. Bêguman ev ên hane ji wan karanin ku jê re ezîm/wêre/cehd lazim e.”

**18.** “Rûyê xwe ji însanan nevegerîne! Li ser rûyê erdê bi qurebûn/bi nepixîn nemeşe. Lewre Allah ji wî kesê ku dinepixe û quretîyê dike hez nake.”

**19.** “Di meşa xwe de mutedîl be û dengê xwe kêm bike. Lewre dengê ji hemû dengan kirêttir/xerabtir dengê kerê ye.”

اَفْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا اَمْ بِه۪ جِنَّةٌۜ بَلِ الَّذ۪ينَ لَا يُؤْمِنُونَ
بِالْاٰخِرَةِ فِي الْعَذَابِ وَالضَّلَالِ الْبَع۪يدِ ﴿٨﴾ اَفَلَمْ يَرَوْا
اِلٰى مَا بَيْنَ اَيْد۪يهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ مِنَ السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِۜ اِنْ نَشَأْ
نَخْسِفْ بِهِمُ الْاَرْضَ اَوْ نُسْقِطْ عَلَيْهِمْ كِسَفًا مِنَ السَّمَٓاءِۜ
اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِكُلِّ عَبْدٍ مُن۪يبٍ ﴿٩﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا دَاوُ۫دَ مِنَّا
فَضْلًاۜ يَا جِبَالُ اَوِّب۪ي مَعَهُ وَالطَّيْرَۚ وَاَلَنَّا لَهُ الْحَد۪يدَۙ ﴿١٠﴾ اَنِ اعْمَلْ
سَابِغَاتٍ وَقَدِّرْ فِي السَّرْدِ وَاعْمَلُوا صَالِحًاۜ اِنّ۪ي بِمَا تَعْمَلُونَ
بَص۪يرٌ ﴿١١﴾ وَلِسُلَيْمٰنَ الرّ۪يحَ غُدُوُّهَا شَهْرٌ وَرَوَاحُهَا شَهْرٌۚ وَاَسَلْنَا
لَهُ عَيْنَ الْقِطْرِۜ وَمِنَ الْجِنِّ مَنْ يَعْمَلُ بَيْنَ يَدَيْهِ بِاِذْنِ رَبِّه۪ۜ
وَمَنْ يَزِغْ مِنْهُمْ عَنْ اَمْرِنَا نُذِقْهُ مِنْ عَذَابِ السَّع۪يرِ ﴿١٢﴾ يَعْمَلُونَ
لَهُ مَا يَشَٓاءُ مِنْ مَحَار۪يبَ وَتَمَاث۪يلَ وَجِفَانٍ كَالْجَوَابِ
وَقُدُورٍ رَاسِيَاتٍۜ اِعْمَلُٓوا اٰلَ دَاوُ۫دَ شُكْرًاۜ وَقَل۪يلٌ مِنْ عِبَادِيَ
الشَّكُورُ ﴿١٣﴾ فَلَمَّا قَضَيْنَا عَلَيْهِ الْمَوْتَ مَا دَلَّهُمْ عَلٰى مَوْتِه۪ٓ
اِلَّا دَٓابَّةُ الْاَرْضِ تَأْكُلُ مِنْسَاَتَهُۚ فَلَمَّا خَرَّ تَبَيَّنَتِ الْجِنُّ
اَنْ لَوْ كَانُوا يَعْلَمُونَ الْغَيْبَ مَا لَبِثُوا فِي الْعَذَابِ الْمُه۪ينِ ﴿١٤﴾

**8.** (Me fêm nekir) “Gelo ew neweyîyê/bêbextîyê li Allah dike an dîn e?” (Nexêr, ne weke gotina we ye!) Berevajî, ew ên bi axîretê îman neanîne di nava ezabê de û di rêşaşîtîyekî dûr (ku vegera bi heqîyê ve pir zor) de ne.

**9.** Erê ma wan erd û esmanên li pêş û paşîya xwe nedîtin? Eger em bixwazin, em ê wan binerd bikin an jî ji asîman di ser wan de parçekirî daxînin. Bêguman di vêya de, ji bo her evdekî munîb (ên ku berê xwe pirzêde didin Allah) re ayetekî (bi îbret) heye.

**10.** Sond be ku me ji alîyê xwe ve serdestî/bijarteyî daye Dawûd. “Gelî çiyan û çukan! Bi wî re (tesbîhkirina min) dubare bikin.” Û me jê re hesin nerm kir.

**11.** (Me jê re got:) “Zirxên fireh hilbibere û (zirxan) birekûpek û zexm çêke. (Hûn jî) amelên qenc bikin. Bêguman ez, karûkirinên we dibînim.”

**12.** Bayê jî (me da) Suleyman. Serê sibê çûna wê mehek û êvarê dagerîna wê mehek e. (Di rojekî de mesafeya du mehan diqedîne.) Me jê re sifirê/paxirê helandî weke lehîyê herikand. Komek cin jî bi emrê Rabbê te di pêşîya wî de dixebitin. Ji wan her kî ji emrê me rû vegerîne, em ezabê agirê har ku alavên bi erjeng direşîne bi wan didin tamkirin.

**13.** Wan ji Suleyman re li gorî daxwaza wî mabedan û peykeran û cifnîyên/leganên weke hewzan fireh û neqerîyên/qazanên cihgirtî ku ji cihên xwe naleqin çêdikirin. Ya malbata Dawûd! Ji bo şikurdarîyê amel (ên salih) bikin. Ji evdên min yên şikurdar pir kêm in.

**14.** Dema ku me hukmê mirina (Suleyman) dabû, ji xeynî kurmekî ku gopalê wî xwaribû, tu kesî xebera mirina wî neda wan. Dema ku (Suleyman) ket erdê fêm bû ku; eger cinan xeybê bizanibûna (bi zena jîyîna Suleyman) ew di nava ezabekî riswaker de wiha nediman.

لَقَدْ كَانَ لِسَبَاٍ فٖى مَسْكَنِهِمْ اٰيَةٌۚ جَنَّتَانِ عَنْ يَمٖينٍ
وَشِمَالٍۜ كُلُوا مِنْ رِزْقِ رَبِّكُمْ وَاشْكُرُوا لَهُۜ بَلْدَةٌ
طَيِّبَةٌ وَرَبٌّ غَفُورٌ ﴿١٥﴾ فَاَعْرَضُوا فَاَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ سَيْلَ الْعَرِمِ
وَبَدَّلْنَاهُمْ بِجَنَّتَيْهِمْ جَنَّتَيْنِ ذَوَاتَىْ اُكُلٍ خَمْطٍ وَاَثْلٍ وَشَيْءٍ
مِنْ سِدْرٍ قَلٖيلٍ ﴿١٦﴾ ذٰلِكَ جَزَيْنَاهُمْ بِمَا كَفَرُواۜ وَهَلْ نُجَازٖٓى
اِلَّا الْكَفُورَ ﴿١٧﴾ وَجَعَلْنَا بَيْنَهُمْ وَبَيْنَ الْقُرَى الَّتٖى بَارَكْنَا
فٖيهَا قُرًى ظَاهِرَةً وَقَدَّرْنَا فٖيهَا السَّيْرَۜ سٖيرُوا فٖيهَا لَيَالِىَ وَاَيَّامًا
اٰمِنٖينَ ﴿١٨﴾ فَقَالُوا رَبَّنَا بَاعِدْ بَيْنَ اَسْفَارِنَا وَظَلَمُٓوا اَنْفُسَهُمْ
فَجَعَلْنَاهُمْ اَحَادٖيثَ وَمَزَّقْنَاهُمْ كُلَّ مُمَزَّقٍۜ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ
لَاٰيَاتٍ لِكُلِّ صَبَّارٍ شَكُورٍ ﴿١٩﴾ وَلَقَدْ صَدَّقَ عَلَيْهِمْ اِبْلٖيسُ
ظَنَّهُ فَاتَّبَعُوهُ اِلَّا فَرٖيقًا مِنَ الْمُؤْمِنٖينَ ﴿٢٠﴾ وَمَا كَانَ لَهُ
عَلَيْهِمْ مِنْ سُلْطَانٍ اِلَّا لِنَعْلَمَ مَنْ يُؤْمِنُ بِالْاٰخِرَةِ مِمَّنْ هُوَ مِنْهَا
فٖى شَكٍّۜ وَرَبُّكَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ حَفٖيظٌۚ ﴿٢١﴾ قُلِ ادْعُوا الَّذٖينَ
زَعَمْتُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِۚ لَا يَمْلِكُونَ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ فِى السَّمٰوَاتِ
وَلَا فِى الْاَرْضِ وَمَا لَهُمْ فٖيهِمَا مِنْ شِرْكٍ وَمَا لَهُ مِنْهُمْ مِنْ ظَهٖيرٍ ﴿٢٢﴾

**15.** Sond be di warê (qewmê) Sebe’ de, ji bo we (ji îbret girtine re) ayetek heye. (Warên wan) ji alîyê rastê û çepê ve bi du bexçe bûn. Ji rizqê Rabbê xwe bixwin û jê re şikur bikin. Bajarekî xweşik û Rabbekî Xafûr...

**16.** (Lê wan şikur nekirin û) rû vegerandin. (Di gerewa nankorîya wan de) me jî lehîya Arîm di ser wan de şand. Û herdu bexçeyên wan (ku li ser zimanan dasitan bûn) bi du bexçeyên (xerab) ve ku di nava wan de dara kifêrî ku fêkîyên wê tehl in û hinek jî serwîzad/dara erz hebûn guherand.

**17.** Ha ji ber nankorîya wan me ew wiha cezakir. Em ji ew ên nankor pê ve kesekî din ceza nakin.

**18.** Me (di navbera beledê wan û) warên ku me bereket dabûyê de bajarên ku tên xuyakirin ava kir. Me rêwîtîya wan (di navbera bajaran de bi ewlehî) teqdîr kir. (Me got:) “Li wê derê bi şev û bi roj bi ewlehî bigerin.”

**19.** Wan gotin: “Rabbê me! Navbera rêwîtîyên me veke.” û zilim li nefsên xwe kirin. Me wan kir çîrokên (ku însan ji aqubeta wan diaxivin) û me ew piç û parî kirin. Bêguman di vêya de, ji bo her kesê pirzêde sebirvan û pirzêde şikurdar in re ayet hene.

(Gelek qewmên ku Allah (ac) ji bo wan rewîtîyê hêsan kiriye, bi bêrîkirina demên borî nankorî li wan nîmetan kirine.)

**20.** Sond be ku Îblîs, di zena xwe (ya ku digot ez ê pirên wan bixerifînim) de mafdar derket.

**21.** Li ser wan qet tu otorîteya (Îblîs) tune bû. (Lê belê) ji bo ku ew ên îman bi axîretê anîne û ew ên tê de di gumanê de ne em wan eşkere bikin (me muhlet da Îblîs). Rabbê te, li ser her tiştî parêzkar e.

**22.** Bibêje: “Heydê! Ew ên ku ji xeynî Allah we zen (a îlâhtîyê) ji wan dikirin gazî wan bikin (em binêrin)!” Ew ne li erdê û ne jî li esman ne tiştekî bi qasî zereyekî ne. Di wan her duyan de hevparîyeke wan tune. Qet tu kesekî ku (Allah) ji wan alîkar/piştgir girtibe jî tune.

وَلَا تَنْفَعُ الشَّفَاعَةُ عِنْدَهُٓ اِلَّا لِمَنْ اَذِنَ لَهُۜ حَتّٰٓى اِذَا فُزِّعَ
عَنْ قُلُوبِهِمْ قَالُوا مَاذَاۙ قَالَ رَبُّكُمْۜ قَالُوا الْحَقَّۚ وَهُوَ الْعَلِيُّ
الْكَبِيرُ ﴿٢٣﴾ قُلْ مَنْ يَرْزُقُكُمْ مِنَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ
قُلِ اللّٰهُۙ وَاِنَّٓا اَوْ اِيَّاكُمْ لَعَلٰى هُدًى اَوْ فِي ضَلَالٍ مُبِينٍ ﴿٢٤﴾
قُلْ لَا تُسْـَٔلُونَ عَمَّٓا اَجْرَمْنَا وَلَا نُسْـَٔلُ عَمَّا تَعْمَلُونَ ﴿٢٥﴾ قُلْ
يَجْمَعُ بَيْنَنَا رَبُّنَا ثُمَّ يَفْتَحُ بَيْنَنَا بِالْحَقِّۜ وَهُوَ الْفَتَّاحُ الْعَلِيمُ ﴿٢٦﴾
قُلْ اَرُونِيَ الَّذِينَ اَلْحَقْتُمْ بِهِ شُرَكَٓاءَ كَلَّاۜ بَلْ هُوَ اللّٰهُ
الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ ﴿٢٧﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَاكَ اِلَّا كَٓافَّةً لِلنَّاسِ
بَشِيرًا وَنَذِيرًا وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٢٨﴾
وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا الْوَعْدُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿٢٩﴾ قُلْ لَكُمْ
مِيعَادُ يَوْمٍ لَا تَسْتَاْخِرُونَ عَنْهُ سَاعَةً وَلَا تَسْتَقْدِمُونَۚ ﴿٣٠﴾
وَقَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لَنْ نُؤْمِنَ بِهٰذَا الْقُرْاٰنِ وَلَا بِالَّذ۪ي
بَيْنَ يَدَيْهِۜ وَلَوْ تَرٰٓى اِذِ الظَّالِمُونَ مَوْقُوفُونَ عِنْدَ رَبِّهِمْۚ
يَرْجِعُ بَعْضُهُمْ اِلٰى بَعْضٍۨ الْقَوْلَۚ يَقُولُ الَّذِينَ اسْتُضْعِفُوا
لِلَّذِينَ اسْتَكْبَرُوا لَوْلَٓا اَنْتُمْ لَكُنَّا مُؤْمِنِينَ ﴿٣١﴾

**23.** Li cem wî, ji xeynî kesê ku destûr daye wan pê ve şefaeta qet tu kesî feyde nade. Dema ku ji qelbên wan (melaîketan) tirs diçe wiha dibêjin: “Rabbê we çi ferman kir?” (Wek cewab hemû bi hev re) dibêjin: “Tiştê heq got. Ew, (bi zat û sifetên xwe herî bilind) Alîy û (yê herî mezin) Kebîr e.”

(Sûreya Sebe’ ayetên 22 û 23. li ser sebebên ku însanan beralîyê şirkê ve dikin disekine û wan pûç dike. Wisan ku; heyîna ku feyde jê tê hêvî kirin divê ji çar wesfan herî kêm xwedîyê yekî be.

1. Divê di milkê xwe de xwedî otorîte be.
2. Ne otorîteya yekane be jî divê wek hevparek xwedîyek ji n milkê be.
3. Di milk de hevparîya wî tune be jî divê wek alîkar an jî paşmîr/wezîr xwedî raye be.
4. Ne xwedî sê xisûsîyetan be jî divê li cem xwedîyê milkê mirovekî xwedîrêz û îhtîram be.

Allah (ac) van her çar wesfan, ji xeynî xwe ji hemû heyînan nefiy kiriye. Milk, bi tenê aîdê Allah (ac). Di tu zereyekî wê de jî şirîk û hevparên wî tune. Raye û alîkarî nedaye tu kesî. Ji xeynî ew ên ku destûr daye wan pê ve tu kes ne xwedî heqê şefaetê ye. Nexwe mirov, divê dîn ji Allah (ac) re xalis bike û qet tu navbeynkar nexe navbera xwe û rasterast berê xwe bide Rabbê xwe û ji wî bixwaze û ji wî hêvî bike. Wekî din ji bo têgeha şefaetê ya di Qur'anê de bnr. 43/Zuxrûf, 86)




**24.** Bibêje: “Ji erd û asîman yê ku riziq dide we kî ye?” Bibêje: “Allah e! Em an jî hûn yek ji me an li ser rêya rast e an jî di nava rêşaşîtîyeke eşkere de ye. (Eger yek ji me li ser rêya rast be yê din teqez divê di nava xerifîyê de be. Li gorî ku ez ji cem Rabbê xwe li ser hîdayetê me, li paş vebijêrkek tenê dimîne.)”

**25.** Bibêje: “Di cirmên ku me kirine de tu berpirsîyarîya we tune; di kirinên we de jî tu mesûlîyeta me tune.”

**26.** Bibêje: “Rabbê me we em hemû li cem hev bicivîne û paşê wê bi ya heq hukim bide û navbera me bifesilîne. Ew, (yê ku di navbera evdên xwe de hukim dide û fetih û serkeftinê îhsan dike) Fettah û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**27.** Bibêje: “De ka ew ên we ji wî (Allah) re dikirin şirîk nîşanî min bidin (em binêrin)! (Ez dixwazim bizanibim ka hûn di kîjan wesfan de ji Allah re şirîkan çêdikin) Qet/Tu car! Berevajî, ew (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.”

**28.** Me tu ji hemû însanan re wek mizgînvan û hişyarker şandîye. Lê belê pirên însanan nizanin.”

**29.** Wiha dibêjin: “Eger hûn rast dibêjin ew (ezab) ê ku hûn (li me) wead dikin kengê ye? (De bila were em bibînin!)

**30.** Bibêje: “Ji bo we rojeke pevgihînê/civînê heye. Hûn ji wê ne seatek paş ve dimînin û ne jî pêş ve diçin.”

**31.** Kafiran gotin: “Em bi vê Qur'anê jî û bi (Kitêb) ên berê de hatine jî îman naynin.” Xwezî dema ku ew zilimkar di hizûra Rabbê te de tên sekinandin te wan bidîtana! Dev davêjin hevdu. Ew ên qels (mustezaf) ji wan ên qure (mustekbîr) re dibêjin: “Eger ne ji we bûya muheqeq em ê mumîn bibûna.”

قَالَ الَّذِينَ اسْتَكْبَرُوا لِلَّذِينَ اسْتُضْعِفُوا اَنَحْنُ صَدَدْنَاكُمْ
عَنِ الْهُدٰى بَعْدَ اِذْ جَٓاءَكُمْ بَلْ كُنْتُمْ مُجْرِمِينَ ﴿٣٢﴾ وَقَالَ الَّذِينَ
اسْتُضْعِفُوا لِلَّذِينَ اسْتَكْبَرُوا بَلْ مَكْرُ الَّيْلِ وَالنَّهَارِ
اِذْ تَأْمُرُونَنَٓا اَنْ نَكْفُرَ بِاللّٰهِ وَنَجْعَلَ لَهُٓ اَنْدَادًاۜ وَاَسَرُّوا النَّدَامَةَ
لَمَّا رَاَوُا الْعَذَابَۜ وَجَعَلْنَا الْاَغْلَالَ فٖٓي اَعْنَاقِ الَّذِينَ كَفَرُواۜ
هَلْ يُجْزَوْنَ اِلَّا مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٣٣﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَا فٖي قَرْيَةٍ
مِنْ نَذٖيرٍ اِلَّا قَالَ مُتْرَفُوهَٓاۙ اِنَّا بِمَٓا اُرْسِلْتُمْ بِهٖ كَافِرُونَ ﴿٣٤﴾ وَقَالُوا
نَحْنُ اَكْثَرُ اَمْوَالًا وَاَوْلَادًاۙ وَمَا نَحْنُ بِمُعَذَّبٖينَ ﴿٣٥﴾ قُلْ
اِنَّ رَبّٖي يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَٓاءُ وَيَقْدِرُ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ
لَا يَعْلَمُونَ ﴿٣٦﴾ وَمَٓا اَمْوَالُكُمْ وَلَٓا اَوْلَادُكُمْ بِالَّتٖي تُقَرِّبُكُمْ
عِنْدَنَا زُلْفٰٓى اِلَّا مَنْ اٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًاۘ فَاُو۬لٰٓئِكَ لَهُمْ جَزَٓاءُ
الضِّعْفِ بِمَا عَمِلُوا وَهُمْ فِي الْغُرُفَاتِ اٰمِنُونَ ﴿٣٧﴾ وَالَّذِينَ
يَسْعَوْنَ فٖٓي اٰيَاتِنَا مُعَاجِزٖينَ اُو۬لٰٓئِكَ فِي الْعَذَابِ مُحْضَرُونَ ﴿٣٨﴾
قُلْ اِنَّ رَبّٖي يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِهٖ وَيَقْدِرُ
لَهُۜ وَمَٓا اَنْفَقْتُمْ مِنْ شَيْءٍ فَهُوَ يُخْلِفُهُۚ وَهُوَ خَيْرُ الرَّازِقٖينَ ﴿٣٩﴾

**32.** Ew ên mustekbîr ji mustezafan re wiha dibêjin: "Piştî ku hîdayet ji we re hat, ma qey me hûn jê vegerand? (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, hûn gunehkarên mucrîm/sûcdar bûn."

**33.** Ew ên mustezaf, ji mustekbîran re wiha dibêjin: "Berevajî (îş û karê we) bi şev û bi roj (çêkirina) hîle bû... (Lewre) we, li me emir dikir ku em li dij Allah bibin kafir û jê re şirîkan çêbikin." Dema ku ezab dibînin (hundirê wan disoje, lê) poşmanîya xwe vedişêrin. Me jî xelekên bizincîr di stûyê kafiran de borand. (Başe ku çi) ma qey wê ji amelên xwe pê ve bi tiştekî din re bihatibana cezakirin?

((Ji bo rewşa ew serok û civakên tabiê wan ên ku meşrûîyeta xwe ji îslamê nagirin bnr. 2/Baqara, 167)

**34.** Me ji kîjan welatî re hişyarkerekî şandibe muheqeq her dewlemendê rûdîtî yên di nav wan de dijîn wiha gotin: "Em, ew tiştê ku hûn pê hatine şandin înkar dikin."

(Bnr. 18/Kehf, 36)

**35.** Gotin: "Malên me û zarokên me herî zêdetir in. Ezab jî li me nayê kirin."

**36.** Bibêje: "Bêguman Rabbê min, ji evdên xwe ji kî re bixwaze rizqê wî fireh dike (û ji kî re bixwaze) teng dike. Lê belê pirên însanan nizanin."

**37.** Malên we û zarokên we, hûn nêzîkî me nake. (Yên ku nêzîkî me dibin) ew ên îman tînin û amelên salih dikin in. Ha ji van re, di muqabilê kirinên wan de mikafatekî qat bi qat hatîye zêdekirin heye. Û ew, di xurfeyên/odeyên (cennetê de ji bo mêvanên taybet amadebûyî ne) di ewlehîyê de ne.

(Bnr. 18/Kehf, 36)

**38.** Ew ên dixebitin ku ayetên me bêbandor/betal bikin jî evana di nava ezabê de wê bêne amadekirin.

**39.** Bibêje: "Bêguman Rabbê min, ji evdên xwe ji kî re bixwaze rizqê wî fireh dike (û ji kî re bixwaze) teng dike. Hûn her çi înfaq bikin wê (Allah) tiştekî din bixe şûna wî. Ew bixêrtirê raziqan e."

وَيَوْمَ يَحْشُرُهُمْ جَمِيعًا ثُمَّ يَقُولُ لِلْمَلٰٓئِكَةِ اَهٰٓؤُلَٓاءِ اِيَّاكُمْ
كَانُوا يَعْبُدُونَ ﴿٤٠﴾ قَالُوا سُبْحَانَكَ اَنْتَ وَلِيُّنَا مِنْ دُونِهِمْۚ
بَلْ كَانُوا يَعْبُدُونَ الْجِنَّۚ اَكْثَرُهُمْ بِهِمْ مُؤْمِنُونَ ﴿٤١﴾ فَالْيَوْمَ
لَا يَمْلِكُ بَعْضُكُمْ لِبَعْضٍ نَفْعًا وَلَا ضَرًّاۜ وَنَقُولُ لِلَّذِينَ ظَلَمُوا
ذُوقُوا عَذَابَ النَّارِ الَّتِي كُنْتُمْ بِهَا تُكَذِّبُونَ ﴿٤٢﴾ وَاِذَا تُتْلٰى
عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ قَالُوا مَا هٰذَٓا اِلَّا رَجُلٌ يُرِيدُ اَنْ يَصُدَّكُمْ
عَمَّا كَانَ يَعْبُدُ اٰبَٓاؤُكُمْۚ وَقَالُوا مَا هٰذَٓا اِلَّٓا اِفْكٌ مُفْتَرًىۜ
وَقَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لِلْحَقِّ لَمَّا جَٓاءَهُمْۙ اِنْ هٰذَٓا اِلَّا سِحْرٌ مُبِينٌ ﴿٤٣﴾
وَمَٓا اٰتَيْنَاهُمْ مِنْ كُتُبٍ يَدْرُسُونَهَا وَمَٓا اَرْسَلْنَٓا اِلَيْهِمْ قَبْلَكَ
مِنْ نَذِيرٍۜ ﴿٤٤﴾ وَكَذَّبَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْۙ وَمَا بَلَغُوا مِعْشَارَ مَٓا اٰتَيْنَاهُمْ
فَكَذَّبُوا رُسُلِيࣞ فَكَيْفَ كَانَ نَكِيرِ ﴿٤٥﴾ قُلْ اِنَّمَٓا اَعِظُكُمْ بِوَاحِدَةٍۚ
اَنْ تَقُومُوا لِلّٰهِ مَثْنٰى وَفُرَادٰى ثُمَّ تَتَفَكَّرُواࣞ مَا بِصَاحِبِكُمْ
مِنْ جِنَّةٍۜ اِنْ هُوَ اِلَّا نَذِيرٌ لَكُمْ بَيْنَ يَدَيْ عَذَابٍ شَدِيدٍ ﴿٤٦﴾ قُلْ
مَا سَاَلْتُكُمْ مِنْ اَجْرٍ فَهُوَ لَكُمْۜ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلَى اللّٰهِۚ وَهُوَ
عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ شَهِيدٌ ﴿٤٧﴾ قُلْ اِنَّ رَبّ۪ي يَقْذِفُ بِالْحَقِّۚ عَلَّامُ الْغُيُوبِ ﴿٤٨﴾

**40.** Wê rojê, wê wan hemûyan (bivejîne û) di hizûra xwe de bicivîne. Paşê ji melaîketan re dibêje: “Ma ev bûn ew ên ku ji we re îbadet dikirin?”

**41.** Wê bibêjin: “Em te tenzîh dikin. Dostê me/welîyê me tu yî, ne ew in. (Nexêr, ne wisan e!) Rastîya vê karê, wan îbadetê cinan dikirin. Û pirên wan, bi cinan (bi gotinên “Melaîket, qîzên Allah in.”, “Evana hûn nêzî Allah dikin.” yên batil re) îman dianîn.

**42.** Îro, hêza we nagihîjê ku hûn bikaribin ji bo hevdu ne feydeyek û ne jî zerarek bidin hevdu. Em ji zaliman re wiha dibêjin: “Ezabê wê agirê ku we diderewand, bitamînin (em bibînin).”

**43.** Dema ku ji wan re ayetên me yên vikîvekirî têne xwendin wiha gotin: “Ev, dixwaze ji (îlâhên we) yê ku bavên we îbadet li wan dikirin, we rabigire pê ve ne zilamekî din e. Û wiha digotin: “Ev, bitenê bêbextîyeke lihevhatî ye.” Ew ên kafir, dema ku heq ji wan re tê, wiha gotin: “Ev, ji sêhreke vikîvekirî pê ve ne tiştekî din e.”

**44.** Me, Kitêbekî ku pê ders (û talîm) bikin nedaye wan. Berîya te me ji wan re tu hişyarker jî neşandine.

**45.** Ew ên berîya van de jî derewandibûn. Lê belê evana (ehlê Mekkeyê) digel ku dehyeka ya ku me dabû ew ên berîya wan bi dest nexistine (dîsa jî) pêxemberê min derewandin. (Di muqabilê înkarkirina wan de) ka înkara min çawa ye?

**46.** Bibêje: “Ez li we şîretekî tenê dikim: “Ji bo Allah (li ser navê dîtina heqîyê) dudo bi dudo û yek bi yek bilebitin û paşê bifikirin. (Hûn ê bibînin ku) di wî hevalê we (yê pêxember de) qet tu dînîtî tune. Ew, di berîya ezabekî dijwar de ji hişyarkerekî (ku we hişyar dike) pê ve ne kesekî din e.”

**47.** Bibêje: “(Di muqabilê daweta/teblîxa xwe de) destheqekî ku ez ji we dixwazim hebe bila ew jî ji we re be. Destheqê min aîdê Allah e. Ew, li ser her tiştî şahid e.”

**48.** Bibêje: “Bêguman Rabbê min, heqê/nûbûwetê (ji bo kî bixwaze li ser wî) bi cih dike. (Ew,) zanayê xeybê ye.”

قُلْ جَٓاءَ الْحَقُّ وَمَا يُبْدِئُ الْبَاطِلُ وَمَا يُع۪يدُ ﴿٤٩﴾ قُلْ اِنْ ضَلَلْتُ فَاِنَّمَٓا
اَضِلُّ عَلٰى نَفْس۪يۚ وَاِنِ اهْتَدَيْتُ فَبِمَا يُوح۪ٓي اِلَيَّ رَبّ۪يۜ اِنَّهُ سَم۪يعٌ
قَر۪يبٌ ﴿٥٠﴾ وَلَوْ تَرٰٓى اِذْ فَزِعُوا فَلَا فَوْتَ وَاُخِذُوا مِنْ مَكَانٍ قَر۪يبٍۙ ﴿٥١﴾
وَقَالُٓوا اٰمَنَّا بِه۪ۚ وَاَنّٰى لَهُمُ التَّنَاوُشُ مِنْ مَكَانٍ بَع۪يدٍۚ ﴿٥٢﴾ وَقَدْ كَفَرُوا بِه۪
مِنْ قَبْلُۚ وَيَقْذِفُونَ بِالْغَيْبِ مِنْ مَكَانٍ بَع۪يدٍ ﴿٥٣﴾ وَح۪يلَ بَيْنَهُمْ وَبَيْنَ
مَا يَشْتَهُونَ كَمَا فُعِلَ بِاَشْيَاعِهِمْ مِنْ قَبْلُۜ اِنَّهُمْ كَانُوا ف۪ي شَكٍّ مُر۪يبٍ ﴿٥٤﴾

**49.** Bibêje: “Heq hat. Batil, ne dikare dest bi tiştekî bike û biafirîne û ne jî paşve bîne.”

**50.** Bibêje: “Eger ez bixerifim, di aleyha xwe de dixerifim. Hîdayetê bibînim ev, bi ya ku Rabbê min li min wehîy kiriye pêk tê. Bêguman ew, (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (ew ê nêzîkî evdên xwe) Qarîb e.”

**51.** Dema ku tirsa bi erjeng (ya qiyametê) wan dorpêç kir, tu rewşa wan bibînî! Êdî rev tune û wê di cihekî nêz de bêne girtin.

**52.** “Dibêjin: “Me îman pê anî. Ji wê warê dûr, ka wê çawa ew bi dest bixin? (Warê tobe û îmanê dinya bû. Êdî ji wê pir dûr in.)

**53.** Lê wan berê de wî înkar kiribûn. Ji dûr ve xeybê didin ber keviran.

(Daxwazîya wan a ku dîsa vegerin dinyayê û îman bînin, nîşan dide ku ew neçar in û di nava nezanînê de xeybê didin ber keviran.)

**54.** Weke ku berê de li emsalên wan hatibû kirin, navbera wan û (vê) daxwaza wan de astengî hatîye xistin. Lewre ew, di nava gumanekî de bûn ku bêaramîtî dida wan.

## 35. SÛREYA FATIR

*(Sûreya Fatir, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çil û pênc (45) ayet e)*

*Di Qur’anê de sûreya sî û pêncemîn e. Di ayeta yekemîn de peyva “Fatir” hatîye bikaranîn. Ev kelîme tê ser maneya xaliqê ku bê mîsal û bê model dixuliqîne. Ji ber vê yekê wek sûreya Fatir hatîye binav kirin. Di vê sûreyê de gelek delîlên der heqê heyîn û wehdanîyeta Allah (ac) û qûdret û hikmeta wî hatîye vegotin. Bextewarîya ku lihêvîya kesên guh dane wehîyê û amadekarîya axîretê kirine jî û encama dilsotîner ya ku lihêvîya kafiran e jî tê bibîr xistin. Dîsa tê bibîr xistin digel ku însan bi tevahî nankor in jî Allah (ac) muhlet daye wan û gazî li wan tê kirin ku vê fersendê binirxînin.*

سُورَةُ فَاطِرٍ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسٌ وَاَرْبَعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ فَاطِرِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ جَاعِلِ الْمَلٰٓئِكَةِ رُسُلًا
اُو۬ل۪ٓي اَجْنِحَةٍ مَثْنٰى وَثُلٰثَ وَرُبَاعَۜ يَز۪يدُ فِي الْخَلْقِ مَا يَشَٓاءُۜ اِنَّ اللّٰهَ
عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿١﴾ مَا يَفْتَحِ اللّٰهُ لِلنَّاسِ مِنْ رَحْمَةٍ فَلَا مُمْسِكَ
لَهَاۚ وَمَا يُمْسِكْۙ فَلَا مُرْسِلَ لَهُ مِنْ بَعْدِه۪ۜ وَهُوَ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُ ﴿٢﴾
يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اذْكُرُوا نِعْمَتَ اللّٰهِ عَلَيْكُمْۜ هَلْ مِنْ خَالِقٍ غَيْرُ اللّٰهِ
يَرْزُقُكُمْ مِنَ السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِۜ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۘ فَاَنّٰى تُؤْفَكُونَ ﴿٣﴾

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Hamd, jî wî Allahê re ku wî erd û asîman xuliqandîye û melaîketan bi baskên dudo dudo û sisê sisê û çareçar kiriye qasid/ragihîner. Ew, di xuliqandinê de çi bivê zêde dike. Bêguman Allah, qadirê her tiştî ye.

**2.** Allah ji rahmeta xwe tiştekî ji bo însanan bexişandibe tu kes tune ku wê ji ber wan bigire û tiştekî ji ber wan bigire jî kes nikare pêşî li ber veke/berde. Ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**3.** Gelî însanan! Nîmetên Allah ya li ser xwe bi bîr bînin. Qey ji xeynî Allah xaliqekî ku ji erd û esman we dirizqîne heye? Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh nîne. (Herwiha) çawa dibe ku hûn (ji tewhîdê bi bal şirkê ve) tên vegerandin?

وَاِنْ يُكَذِّبُوكَ فَقَدْ كُذِّبَتْ رُسُلٌ مِنْ قَبْلِكَ وَاِلَى اللّٰهِ تُرْجَعُ
الْاُمُورُ ﴿٤﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّ فَلَا تَغُرَّنَّكُمُ الْحَيٰوةُ
الدُّنْيَا وَلَا يَغُرَّنَّكُمْ بِاللّٰهِ الْغَرُورُ ﴿٥﴾ اِنَّ الشَّيْطَانَ لَكُمْ عَدُوٌّ
فَاتَّخِذُوهُ عَدُوًّا اِنَّمَا يَدْعُوا حِزْبَهُ لِيَكُونُوا مِنْ اَصْحَابِ السَّعِيرِ ﴿٦﴾
اَلَّذِينَ كَفَرُوا لَهُمْ عَذَابٌ شَدِيدٌ وَالَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَاَجْرٌ كَبِيرٌ ﴿٧﴾ اَفَمَنْ زُيِّنَ لَهُ سُٓوءُ عَمَلِهِ
فَرَاٰهُ حَسَنًا فَاِنَّ اللّٰهَ يُضِلُّ مَنْ يَشَٓاءُ وَيَهْدِي مَنْ يَشَٓاءُ فَلَا تَذْهَبْ
نَفْسُكَ عَلَيْهِمْ حَسَرَاتٍ اِنَّ اللّٰهَ عَلِيمٌ بِمَا يَصْنَعُونَ ﴿٨﴾ وَاللّٰهُ
الَّذِٓي اَرْسَلَ الرِّيَاحَ فَتُثِيرُ سَحَابًا فَسُقْنَاهُ اِلٰى بَلَدٍ مَيِّتٍ فَاَحْيَيْنَا
بِهِ الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَا كَذٰلِكَ النُّشُورُ ﴿٩﴾ مَنْ كَانَ يُرِيدُ الْعِزَّةَ فَلِلّٰهِ
الْعِزَّةُ جَمِيعًا اِلَيْهِ يَصْعَدُ الْكَلِمُ الطَّيِّبُ وَالْعَمَلُ الصَّالِحُ يَرْفَعُهُ
وَالَّذِينَ يَمْكُرُونَ السَّيِّـَٔاتِ لَهُمْ عَذَابٌ شَدِيدٌ وَمَكْرُ اُو۬لٰٓئِكَ
هُوَ يَبُورُ ﴿١٠﴾ وَاللّٰهُ خَلَقَكُمْ مِنْ تُرَابٍ ثُمَّ مِنْ نُطْفَةٍ ثُمَّ جَعَلَكُمْ
اَزْوَاجًا وَمَا تَحْمِلُ مِنْ اُنْثٰى وَلَا تَضَعُ اِلَّا بِعِلْمِهِ وَمَا يُعَمَّرُ مِنْ مُعَمَّرٍ
وَلَا يُنْقَصُ مِنْ عُمُرِهِٓ اِلَّا فِي كِتَابٍ اِنَّ ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَسِيرٌ ﴿١١﴾

**4.** Eger ew te biderewînin bêşik, wan pêxemberên berîya te jî derewandibûn. Hemû kar, bi bal Allah ve tên vegerandin.

**5.** Gelî însanan! Bêguman weada Allah heq e. (Nexwe) bila jiyana dinyayê we nexapîne. Ew ê pir xapînoker (şeytan) jî bila we bi Allah nexapîne.

**6.** Qet tu şûbhe tune ku şeytan dijminê we ye. (Di wê rewşê de) hûn jî bibin dijminê wî. Ew, koma/firqeya xwe bi bal agirê ku alavên bi erjeng direşîne ve divexwîne/dawet dike.

**7.** Ji wan ên ku xwe noqî kufrê kirine re ezabekî dijwar heye. Ji bo ew ên îman anîne re jî bexişandin û mikafatekî mezin heye.

**8.** Ma ew kesê ku amelê wî yê xerab jê re xemilandî xuya bibe û ew jî xweşik dibîne (qet dibe wekî wî kesê ku Allah ew hîdayet kiriye)? Bêşik Allah, kî bixwaze dixerifîne û kî jî bixwaze hîdayet dike. (Nexwe ji ber ku îman naynin) tu ji bo wan xwe xemgîn neke. Bêguman Allah bi karûkirinên wan dizane.

(Ji bo ku Allah (ac) teselî dide Rasûlê xwe bnr. 20/Taha, 2)

**9.** Allah, bayê dişîne û (ew ba jî) ewran dilevîne. Em (ewran) bi ser herêmekî mirî/hişkbûyî ve dişînin û pê piştî mirina wê axê vedijînin. Ha vejîna ji nû ve jî wisan e.

**10.** Kî îzzet bixwaze bêguman, hemû îzzet aîdê Allah e. Peyva xweşik bi bal wî ve derdikeve. (Peyva xweşik jî) amelê salih bilind dike. Ji bo wan ên kemîn datînin re, ezabekî dijwar heye. Kemînên wan xera dibin û winda dibin diçin.

**11.** Allah, we ji axê û paşê ji dilopek av xuliqand. Piştre hûn kirin cot/jin û mêr. Beyî zanîna wî ne tu mê/jin avis/bi heml dimîne û ne jî dizê/diwelidîne. Umirdirêjîya candarekî û umirkurtîya wî jî muheqeq di Kitêbekî de nivîsandî ye. Bêguman ev, ji Allah re hêsan e.

وَمَا يَسْتَوِي الْبَحْرَانِ هٰذَا عَذْبٌ فُرَاتٌ سَٓائِغٌ شَرَابُهُ وَهٰذَا
مِلْحٌ اُجَاجٌ وَمِنْ كُلٍّ تَاْكُلُونَ لَحْمًا طَرِيًّا وَتَسْتَخْرِجُونَ
حِلْيَةً تَلْبَسُونَهَا وَتَرَى الْفُلْكَ فِيهِ مَوَاخِرَ لِتَبْتَغُوا
مِنْ فَضْلِهِ وَلَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿١٢﴾ يُولِجُ الَّيْلَ فِي النَّهَارِ
وَيُولِجُ النَّهَارَ فِي الَّيْلِ وَسَخَّرَ الشَّمْسَ وَالْقَمَرَ كُلٌّ يَجْرِي
لِاَجَلٍ مُسَمًّى ذٰلِكُمُ اللّٰهُ رَبُّكُمْ لَهُ الْمُلْكُ وَالَّذِينَ
تَدْعُونَ مِنْ دُونِهِ مَا يَمْلِكُونَ مِنْ قِطْمِيرٍ ﴿١٣﴾ اِنْ تَدْعُوهُمْ
لَا يَسْمَعُوا دُعَٓاءَكُمْ وَلَوْ سَمِعُوا مَا اسْتَجَابُوا لَكُمْ وَيَوْمَ
الْقِيٰمَةِ يَكْفُرُونَ بِشِرْكِكُمْ وَلَا يُنَبِّئُكَ مِثْلُ خَبِيرٍ ﴿١٤﴾
يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اَنْتُمُ الْفُقَرَٓاءُ اِلَى اللّٰهِ وَاللّٰهُ هُوَ الْغَنِيُّ الْحَمِيدُ ﴿١٥﴾
اِنْ يَشَاْ يُذْهِبْكُمْ وَيَاْتِ بِخَلْقٍ جَدِيدٍ ﴿١٦﴾ وَمَا ذٰلِكَ
عَلَى اللّٰهِ بِعَزِيزٍ ﴿١٧﴾ وَلَا تَزِرُ وَازِرَةٌ وِزْرَ اُخْرٰى وَاِنْ تَدْعُ
مُثْقَلَةٌ اِلٰى حِمْلِهَا لَا يُحْمَلْ مِنْهُ شَيْءٌ وَلَوْ كَانَ ذَا قُرْبٰى
اِنَّمَا تُنْذِرُ الَّذِينَ يَخْشَوْنَ رَبَّهُمْ بِالْغَيْبِ وَاَقَامُوا الصَّلٰوةَ
وَمَنْ تَزَكّٰى فَاِنَّمَا يَتَزَكّٰى لِنَفْسِهِ وَاِلَى اللّٰهِ الْمَصِيرُ ﴿١٨﴾




**12.** Her du behr jî ne wekehev in. Ev, şêrîn e û vexwarina wê hêsan e; ew jî şor û tehl e. Hûn ji herduyan jî goştê teze dixwin û tiştên ji bo zînetê jê derdixînin û li xwe dikin. Ji bo ku hûn lutf û îhsana wî bi dest xwe bixin, tu dibînî ku keştî (di behrê de) diherikin diçin. Hêvî heye ku hûn şikur bikin.

**13.** Şevê dixe ser rojê û rojê jî dixe ser şevê. Roj û heyv jî stûxwar kiriye. Her yek ji wan heta demeke diyarkirî di rêgeha xwe de diherike diçe. Ha ev, Rabbê we Allah e. Hikumranî/Serwerî bitenê aîdê wî ye. Ew ên ku hûn ji xeynî wî dûayê li wan dikin, bi qasî mûyekî jî ne xwedîyê tiştekî ne.

**14.** Hûn ji wan re dûa bikin, dûayen we nabihîzin. Bibihîzin jî nikarin bersivê bidin we. Roja qiyametê şirka we red dikin. Tu kes wekî wî yê ku (agahdarê her tiştî) Xabîr e, nikare agahîyê bide te.

**15.** Gelî însanan! Hûn muhtacê Allah in. Allah, (ew ê her tişt muhtacê wî ye lê ew ne hewcedarê tu kesî) Xaniy û (yê ku herî zêde hemd û pesinandinê heq dike û ji alîyê heyînan ve tê pesinandin) Hamîd e.

**16.** Eger bixwaze we dibe û xelkekî nû (di şûna we de) bîne.

**17.** Ev, ji Allah re ne zor e.

**18.** Qet tu gunehkarek gunehê kesekî din hilnagire. Kesê ku barê wî (yê gunehan) giran e, ji bo (barê wî) hilgire gazî yekî din bike eqrebayê wî be jî gunehê wî lê nayê barkirin. Tu bitenê ew ên (digel ku nabînin an jî tu kes wan nabîne) di xeybê de ji Rabbê xwe ditirsin û nimêja xwe rasterast dikin hişyar dikî. Kî jî xwe pak bike, enceq ji bo xwe paqij dibe. Veger bitenê bi bal Allah ve ye.

وَمَا يَسْتَوِى الْاَعْمٰى وَالْبَصِيرُۙ ﴿١٩﴾ وَلَا الظُّلُمَاتُ وَلَا النُّورُۙ ﴿٢٠﴾
وَلَا الظِّلُّ وَلَا الْحَرُورُۚ ﴿٢١﴾ وَمَا يَسْتَوِى الْاَحْيَٓاءُ وَلَا الْاَمْوَاتُۜ
اِنَّ اللّٰهَ يُسْمِعُ مَنْ يَشَٓاءُۚ وَمَٓا اَنْتَ بِمُسْمِعٍ مَنْ فِي الْقُبُورِ ﴿٢٢﴾
اِنْ اَنْتَ اِلَّا نَذِيرٌ ﴿٢٣﴾ اِنَّٓا اَرْسَلْنَاكَ بِالْحَقِّ بَشِيرًا وَنَذِيرًاۜ
وَاِنْ مِنْ اُمَّةٍ اِلَّا خَلَا فِيهَا نَذِيرٌ ﴿٢٤﴾ وَاِنْ يُكَذِّبُوكَ فَقَدْ
كَذَّبَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْۚ جَٓاءَتْهُمْ رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِ
وَبِالزُّبُرِ وَبِالْكِتَابِ الْمُنِيرِ ﴿٢٥﴾ ثُمَّ اَخَذْتُ الَّذِينَ كَفَرُوا
فَكَيْفَ كَانَ نَكِيرِ ﴿٢٦﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ اَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ
مَٓاءًۚ فَاَخْرَجْنَا بِهِ ثَمَرَاتٍ مُخْتَلِفًا اَلْوَانُهَاۜ وَمِنَ الْجِبَالِ
جُدَدٌ بِيضٌ وَحُمْرٌ مُخْتَلِفٌ اَلْوَانُهَا وَغَرَابِيبُ سُودٌ ﴿٢٧﴾
وَمِنَ النَّاسِ وَالدَّوَٓابِّ وَالْاَنْعَامِ مُخْتَلِفٌ اَلْوَانُهُ كَذٰلِكَۜ
اِنَّمَا يَخْشَى اللّٰهَ مِنْ عِبَادِهِ الْعُلَمَٓؤُاۜ اِنَّ اللّٰهَ عَزِيزٌ غَفُورٌ ﴿٢٨﴾
اِنَّ الَّذِينَ يَتْلُونَ كِتَابَ اللّٰهِ وَاَقَامُوا الصَّلٰوةَ وَاَنْفَقُوا مِمَّا
رَزَقْنَاهُمْ سِرًّا وَعَلَانِيَةً يَرْجُونَ تِجَارَةً لَنْ تَبُورَۙ ﴿٢٩﴾ لِيُوَفِّيَهُمْ
اُجُورَهُمْ وَيَزِيدَهُمْ مِنْ فَضْلِهِۜ اِنَّهُ غَفُورٌ شَكُورٌ ﴿٣٠﴾

**19.** Kor û bînende ne wekhev in.
**20.** Tarîtîyan û ronahî jî (ne yek in).
**21.** Sî û germ jî.
**22.** Zindî û mirî jî nabin wekhev. Allah, kî bixwaze pê dide seh kirin. Tu nikarî bi wan ên di goran de bidî sehkirin.
**23.** Tu bitenê hişyarkerek î.
**24.** Me te bi mizgînvanî û bi hişyarkerî bi heq şand. Ji her ummetê re muheqeq hişyarkerek hatîye û borîye.
**25.** Eger te diderewînin bêguman yên berîya wan jî derewandibûn. Pêxemberên wan ji wan re bi delîlên eşkere û bi suhûfan û bi Kitêbên ronîker hatibûn.
**26.** Paşê min ew ên kafir girtin. (Di muqabilê derewandina wan de) ka înkara min çawa ye?

**27.** Ma te nedît? Allah, ji esman av daxist. Em bi wê avê fêkîyên ku rengên wan cûrbicûr in derdixin. Me di çiyan de jî rêyên spî û sor û rengên cuda û rêyên reş çêkirin.
**28.** Ji însanan û ji heyînan û ji dewaran jî yên wiha reng bi reng hene. Enceq ew ên alîm in ji Allah (bi heqî) ditirsin. Bêguman Allah, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr e.
**29.** Bêguman, ew ên Kitêba Allah dixwînin û nimêja xwe rasterast dikin û ji rizqê ku me daye wan bi dizî û bi eşkerehî înfaq dikin; ew bazirganîyeke ku tê de qet zerar tune hêvî dikin.
**30.** Heta ku (Allah), mikafata wan bêkêmasî bide wan. (Wekî din) ji lutf û îhsana xwe hêj zêdetir jî bide. Lewre ew, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (ew ê spasîyê li evdên xwe dike û mikafata şikurdaran bi zêdehî dide) Şekûr e.

وَالَّذٓي اَوْحَيْنَٓا اِلَيْكَ مِنَ الْكِتَابِ هُوَ الْحَقُّ مُصَدِّقًا لِمَا
بَيْنَ يَدَيْهِؕ اِنَّ اللّٰهَ بِعِبَادِه۪ لَخَب۪يرٌ بَص۪يرٌ ﴿٣١﴾ ثُمَّ اَوْرَثْنَا
الْكِتَابَ الَّذ۪ينَ اصْطَفَيْنَا مِنْ عِبَادِنَاۚ فَمِنْهُمْ ظَالِمٌ لِنَفْسِه۪ۚ
وَمِنْهُمْ مُقْتَصِدٌۚ وَمِنْهُمْ سَابِقٌ بِالْخَيْرَاتِ بِاِذْنِ اللّٰهِؕ ذٰلِكَ هُوَ
الْفَضْلُ الْكَب۪يرُؕ ﴿٣٢﴾ جَنَّاتُ عَدْنٍ يَدْخُلُونَهَا يُحَلَّوْنَ ف۪يهَا
مِنْ اَسَاوِرَ مِنْ ذَهَبٍ وَلُؤْلُؤًاۚ وَلِبَاسُهُمْ ف۪يهَا حَر۪يرٌ ﴿٣٣﴾ وَقَالُوا
الْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذٓي اَذْهَبَ عَنَّا الْحَزَنَؕ اِنَّ رَبَّنَا لَغَفُورٌ
شَكُورٌۙ ﴿٣٤﴾ اَلَّذٓي اَحَلَّنَا دَارَ الْمُقَامَةِ مِنْ فَضْلِه۪ۚ لَا يَمَسُّنَا
ف۪يهَا نَصَبٌ وَلَا يَمَسُّنَا ف۪يهَا لُغُوبٌ ﴿٣٥﴾ وَالَّذ۪ينَ كَفَرُوا
لَهُمْ نَارُ جَهَنَّمَۚ لَا يُقْضٰى عَلَيْهِمْ فَيَمُوتُوا وَلَا يُخَفَّفُ
عَنْهُمْ مِنْ عَذَابِهَاؕ كَذٰلِكَ نَجْز۪ي كُلَّ كَفُورٍۚ ﴿٣٦﴾ وَهُمْ
يَصْطَرِخُونَ ف۪يهَاۚ رَبَّنَٓا اَخْرِجْنَا نَعْمَلْ صَالِحًا غَيْرَ الَّذ۪ي
كُنَّا نَعْمَلُؕ اَوَلَمْ نُعَمِّرْكُمْ مَا يَتَذَكَّرُ ف۪يهِ مَنْ تَذَكَّرَ
وَجَٓاءَكُمُ النَّذ۪يرُؕ فَذُوقُوا فَمَا لِلظَّالِم۪ينَ مِنْ نَص۪يرٍ ﴿٣٧﴾ اِنَّ اللّٰهَ
عَالِمُ غَيْبِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِؕ اِنَّهُ عَل۪يمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٣٨﴾

**31.** Wehîya ku me ji Kitêbê li te kiriye heq bixwe ye û wan (Kitêb) ên berîya xwe tesdîq dike. Bêguman Allah, li ser evdên xwe (agahdarê her tiştî) Xabîr û (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e.

**32.** Paşê me evdên xwe yên ku me ew hilbijartibûn ji Kitêb re kirin waris. Hin ji wan li nefsa xwe zilim dikin û hinek jî di rêyeke navîn de ne. Hinek jî biîznîllah/bi destûra Allah di xêran de pêşbazî dikin û pêş ve diçin. Ev, lutf û îhsana mezin bixwe ye.

**33.** (Bedela amelên wan) cennetên Adn in ku wê têkevinê. Li wê derê bi bazinên zêrîn û bi dûrran/bi încîyan têne xemilandin. Û li wê derê libasên wan ji hevrîşmê ye.

**34.** Dibêjin: "Hamd ji wî Allahê re ku xem ji me birîye. Bêguman Rabbê me, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (ew ê spasîyê li evdên xwe dike û mikafata şikurdaran bi zêdehî dide) Şekûr e.

**35.** "Ew ê ku ji lutf û îhsana xwe, me li warê lêmayîna bêdawîn bicih kiriye. Li wê derê ji me re ne betilandin û ne jî kerixandin/acizbûn heye."

**36.** Ji kafiran re jî agirê cehennemê heye. Ne hukmê mirina wan tê dayîn û ne jî ezabê (agirê) li ser wan tê sivikkirin. Em, hemû nankoran ha wisan ceza dikin.

**37.** Li wê derê bi qîrînê alîkarî dixwazin. (Dibêjin ku:) "Rabbê me! Me ji vir derîne ku em ji xeynî karên xwe yên berê (wek cuda) amelên salih bikin." Ma bi qasî ku kesê tê de bifikire û jê şîret bigire temenek/umrek me ne dabû we? Hişyarkerek jî ji we re hatibû. (Ezabê) bitamînin! Qet tu alîkarê zilimkaran tune.

**38.** Bêguman Allah, zanayê xeyba erd û esmanan e. Bêguman ew, bi tiştê ku di singan de veşartî ye jî dizane.

هُوَ الَّذ۪ي جَعَلَكُمْ خَلَٓائِفَ فِي الْاَرْضِۜ فَمَنْ كَفَرَ فَعَلَيْهِ كُفْرُهُۜ
وَلَا يَز۪يدُ الْكَافِر۪ينَ كُفْرُهُمْ عِنْدَ رَبِّهِمْ اِلَّا مَقْتاًۚ وَلَا يَز۪يدُ
الْكَافِر۪ينَ كُفْرُهُمْ اِلَّا خَسَاراً ﴿٣٩﴾ قُلْ اَرَاَيْتُمْ شُرَكَٓاءَكُمُ الَّذ۪ينَ
تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِۜ اَرُون۪ي مَاذَا خَلَقُوا مِنَ الْاَرْضِ اَمْ لَهُمْ شِرْكٌ
فِي السَّمٰوَاتِۚ اَمْ اٰتَيْنَاهُمْ كِتَاباً فَهُمْ عَلٰى بَيِّنَتٍ مِنْهُۚ بَلْ اِنْ يَعِدُ
الظَّالِمُونَ بَعْضُهُمْ بَعْضاً اِلَّا غُرُوراً ﴿٤٠﴾ اِنَّ اللّٰهَ يُمْسِكُ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ اَنْ تَزُولَاۚ وَلَئِنْ زَالَتَٓا اِنْ اَمْسَكَهُمَا
مِنْ اَحَدٍ مِنْ بَعْدِه۪ۜ اِنَّهُ كَانَ حَل۪يماً غَفُوراً ﴿٤١﴾ وَاَقْسَمُوا بِاللّٰهِ
جَهْدَ اَيْمَانِهِمْ لَئِنْ جَٓاءَهُمْ نَذ۪يرٌ لَيَكُونُنَّ اَهْدٰى مِنْ اِحْدَى الْاُمَمِۚ
فَلَمَّا جَٓاءَهُمْ نَذ۪يرٌ مَا زَادَهُمْ اِلَّا نُفُوراًۙ ﴿٤٢﴾ اِسْتِكْبَاراً فِي الْاَرْضِ
وَمَكْرَ السَّيِّئِۜ وَلَا يَح۪يقُ الْمَكْرُ السَّيِّئُ اِلَّا بِاَهْلِه۪ۜ فَهَلْ يَنْظُرُونَ
اِلَّا سُنَّتَ الْاَوَّل۪ينَۚ فَلَنْ تَجِدَ لِسُنَّتِ اللّٰهِ تَبْد۪يلاًۚ وَلَنْ تَجِدَ لِسُنَّتِ
اللّٰهِ تَحْو۪يلاً ﴿٤٣﴾ اَوَلَمْ يَس۪يرُوا فِي الْاَرْضِ فَيَنْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ
الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْ وَكَانُٓوا اَشَدَّ مِنْهُمْ قُوَّةًۜ وَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيُعْجِزَهُ
مِنْ شَيْءٍ فِي السَّمٰوَاتِ وَلَا فِي الْاَرْضِۜ اِنَّهُ كَانَ عَل۪يماً قَد۪يراً ﴿٤٤﴾

**39.** Ew ê ku hûn li ser rûyê erdê kirine xelîfe ew e. Kî jî bikeve kufrê di aleyha xwe de noqî kufrê dibe. Kufra kafiran li cem Rabbê wan ji xezeba (Allah) pê ve tiştekî li wan zêdetir nake. Kufra kafiran (ji bo wan) ji zîyanê pê ve tiştekî li wan zêdetir nake.

**40.** Bibêje: “Ka bibêjin, ew îlâhên ji xeynî Allah ku we ji wan re îbadet dikirin çi xuliqandine? Ka nîşanî min bidin, li ser rûyê erdê çi xuliqandine?” Nexwe li erd û esman şirîkatîya wan heye? An jî me kitêb daye wan û ew li ser belgeyekî/wesîqeyekî ne? (Nexêr, ne wisan e!) berevajî ew ên zilimkar, ji xapandinê pê ve tu tiştekî weadê hevdu nakin.

**41.** Bêguman Allah, erd û asîman radigire da ku nekevin. Eger bikevin ji wî pê ve qet tu kes nikare wan ragire. Bêguman ew, (yê ku cezayên heq dikin jî ji ser evdên xwe bi paşve davêje/texîr dike) Halîm û (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr e.

**42.** Wan bi hemû hêzên xwe sond xwarin (û gotin) “Eger ji me re hişyarkerek bê, em ê ji hemû qewman hêj çêtir li ser rêya heq bin.” Dema ji wan re hişyarker hat (ev rewş), enceq rev û dûrbûna wan zêdetir kir.

**43.** Li ser rûyê erdê bi quretî û bi kemîndanînê (li dij hişyarker hatin). Hal ev e ku kemînên xerab, ji xwe pê ve kesekî din dorpêç nake. Qey ew ji sunneta yên berîya xwe pê ve li hêvîya tiştekî din in? Tu, di sunnetullah de guherandinekî nabînî. Tu, di sunnetullah de tu averêbûnê jî nabînî.

**44.** Qey ew li ser rûyê erdê qet nagerin ku aqûbeta yên berîya wan (jîyîne) çawa bûye bibînin? Ew ji hêla hêz û quwwetê ve (ji van) herî dijwartir bûn. Qet tu tiştekî li erd û esmanan ku Allah aciz bihêle tune. Bêguman ew, (zanayê her tiştî) Alîm û (yê ku hêza wî digihîje her tiştî û xwedî qudreta mutleq) Qadîr e.

وَلَوْ يُؤَاخِذُ اللّٰهُ النَّاسَ بِمَا كَسَبُوا مَا تَرَكَ عَلٰى ظَهْرِهَا مِنْ دَٓابَّةٍ وَلٰكِنْ
يُؤَخِّرُهُمْ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّىۚ فَاِذَا جَٓاءَ اَجَلُهُمْ فَاِنَّ اللّٰهَ كَانَ بِعِبَادِهٖ بَصِيرًا ﴿٤٥﴾

سُورَةُ يٰسٓ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَلَاثٌ وَثَمَانُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
يٰسٓۜ ﴿١﴾ وَالْقُرْاٰنِ الْحَكِيمِۙ ﴿٢﴾ اِنَّكَ لَمِنَ الْمُرْسَلِينَۙ ﴿٣﴾
عَلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقِيمٍۜ ﴿٤﴾ تَنْزِيلَ الْعَزِيزِ الرَّحِيمِۙ ﴿٥﴾ لِتُنْذِرَ
قَوْمًا مَٓا اُنْذِرَ اٰبَٓاؤُهُمْ فَهُمْ غَافِلُونَ ﴿٦﴾ لَقَدْ حَقَّ الْقَوْلُ
عَلٰٓى اَكْثَرِهِمْ فَهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٧﴾ اِنَّا جَعَلْنَا فٖٓي اَعْنَاقِهِمْ
اَغْلَالًا فَهِيَ اِلَى الْاَذْقَانِ فَهُمْ مُقْمَحُونَ ﴿٨﴾ وَجَعَلْنَا مِنْ بَيْنِ
اَيْدٖيهِمْ سَدًّا وَمِنْ خَلْفِهِمْ سَدًّا فَاَغْشَيْنَاهُمْ فَهُمْ لَا يُبْصِرُونَ ﴿٩﴾
وَسَوَٓاءٌ عَلَيْهِمْ ءَاَنْذَرْتَهُمْ اَمْ لَمْ تُنْذِرْهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿١٠﴾
اِنَّمَا تُنْذِرُ مَنِ اتَّبَعَ الذِّكْرَ وَخَشِيَ الرَّحْمٰنَ بِالْغَيْبِۚ فَبَشِّرْهُ
بِمَغْفِرَةٍ وَاَجْرٍ كَرِيمٍ ﴿١١﴾ اِنَّا نَحْنُ نُحْيِ الْمَوْتٰى وَنَكْتُبُ
مَا قَدَّمُوا وَاٰثَارَهُمْۜ وَكُلَّ شَيْءٍ اَحْصَيْنَاهُ فٖٓي اِمَامٍ مُبِينٍ ﴿١٢﴾

**45.** Allah, ji ber tiştên ku bi dest xwe xistine ve eger wan ceza bikirana, wê li ser rûyê erdê zindîyek tenê jî nehiştibûya. Lê belê wan heta demeke diyarkirî texîr dike. Axir dema ecelê wan bê (wê fêm bikin ku;) bêguman Allah, li ser evdên xwe binende ye.

## 36. SÛREYA YÂSÎN

*(Sûreya Yâsîn, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heştê û sê (83) ayet e. )*

*Di Qur'anê de sûreya sî û şeşemîn e. Navê xwe ji herdu herfên (Yâ û Sîn) ku ayeta yekemîn ji wan pêkhatî ye sitendîye. Mijarên serata ya di vê sûreyê de ev in; berpirsîyarîyên însanan û wehîy û qewmê Qûreyş ku Muhammed (ass) derewandine û qasidên ku ji qewmê xwe re teblîxa tewhîdê kirine û delîlên eşkere ku wehdanîyet û qûdreta Allah (ac) nişan didin û hişyarkirina li dij şeytan û vejîna piştî mirinê û qiyamet û hesab û ceza.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Yâ, Sîn.

**2.** Qesem bi Qur'ana xwedî hukim û hikmet be.

**3.** Bêşik tu, ji pêxemberên hatine şandin/mursel î.

**4.** (Bêguman tu,) li ser rêya rast î.

**5.** (Ew Qur'an,) ji alîyê (Allahê) ku (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser abdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e hatîye daxistin.

**6.** Ji bo tu qewmekî ku bavên wan nehatîye hişyarkirin û di nava xefletê de ne hişyar bikî (hatî şandin). (Bnr. 28/Qasas, 46)

**7.** Li ser pirên wan ew soz (a ezabê) heq bûye. Ew îman naynin.

**8.** Me, xelqeyên hesin di stûyên wan de borandinê ku ew gihîştine heta argûşka/erçena wan û ew serrakirî mane.

(Ev, şibandinek/teşbîhek e. Di stûyên kafiran de xelqeyekî manewî heye ku ev, ji bo wan dibe astengîya xêran û li dij heqîyê dibe sebebê serhişkî û rikdarîya wan. Wekî din bnr. 6/En'am, 25)

**9.** Me li pêşîya wan û li pişt wan seddek danîye. (Bi ve awayê) me ew nixumandin. Êdî (heqîyê) nabînin.

**10.** Tu wan hişyar bikî jî hişyar nekî jî yek e. Îman naynin.

**11.** Tu enceq bikaribî ew ên didin pey zikrê/Qur'anê û (digel ku nedîtine an jî di cihên ku tu kes wan nabîne de) ji Rahmân ditirsin hişyar bikî. Mizgîna mexfîretê û mikafatekî mezin bide wan.

**12.** Bêşik yê ku mirîyan divejîne em in. Ew (amel) ên ku kirine û di pêş de şandine jî û berhemên ku li paş hiştine jî em dinivîsin. Me, her tiştî di Kitêbeke vikîvekirî de qeyd kiriye.

وَاضْرِبْ لَهُمْ مَثَلًا اَصْحَابَ الْقَرْيَةِۢ اِذْ جَٓاءَهَا الْمُرْسَلُونَۚ ﴿١٣﴾
اِذْ اَرْسَلْنَٓا اِلَيْهِمُ اثْنَيْنِ فَكَذَّبُوهُمَا فَعَزَّزْنَا بِثَالِثٍ فَقَالُوٓا اِنَّٓا
اِلَيْكُمْ مُرْسَلُونَ ﴿١٤﴾ قَالُوا مَٓا اَنْتُمْ اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُنَاۙ وَمَٓا اَنْزَلَ
الرَّحْمٰنُ مِنْ شَيْءٍۙ اِنْ اَنْتُمْ اِلَّا تَكْذِبُونَ ﴿١٥﴾ قَالُوا رَبُّنَا
يَعْلَمُ اِنَّٓا اِلَيْكُمْ لَمُرْسَلُونَ ﴿١٦﴾ وَمَا عَلَيْنَٓا اِلَّا الْبَلَاغُ الْمُبِينُ ﴿١٧﴾
قَالُوٓا اِنَّا تَطَيَّرْنَا بِكُمْۚ لَئِنْ لَمْ تَنْتَهُوا لَنَرْجُمَنَّكُمْ
وَلَيَمَسَّنَّكُمْ مِنَّا عَذَابٌ اَلِيمٌ ﴿١٨﴾ قَالُوا طَٓائِرُكُمْ مَعَكُمْۜ
اَئِنْ ذُكِّرْتُمْۜ بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ مُسْرِفُونَ ﴿١٩﴾ وَجَٓاءَ مِنْ اَقْصَا
الْمَدِينَةِ رَجُلٌ يَسْعٰى قَالَ يَا قَوْمِ اتَّبِعُوا الْمُرْسَلِينَۙ ﴿٢٠﴾
اتَّبِعُوا مَنْ لَا يَسْـَٔلُكُمْ اَجْرًا وَهُمْ مُهْتَدُونَ ﴿٢١﴾ وَمَا لِيَ
لَٓا اَعْبُدُ الَّذ۪ي فَطَرَن۪ي وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٢٢﴾ ءَاَتَّخِذُ مِنْ دُونِه۪ٓ
اٰلِهَةً اِنْ يُرِدْنِ الرَّحْمٰنُ بِضُرٍّ لَا تُغْنِ عَنّ۪ي شَفَاعَتُهُمْ شَيْـًٔا
وَلَا يُنْقِذُونِۚ ﴿٢٣﴾ اِنّ۪ٓي اِذًا لَف۪ي ضَلَالٍ مُب۪ينٍ ﴿٢٤﴾ اِنّ۪ٓي اٰمَنْتُ
بِرَبِّكُمْ فَاسْمَعُونِۜ ﴿٢٥﴾ ق۪يلَ ادْخُلِ الْجَنَّةَۜ قَالَ يَا لَيْتَ قَوْم۪ي
يَعْلَمُونَۙ ﴿٢٦﴾ بِمَا غَفَرَ ل۪ي رَبّ۪ي وَجَعَلَن۪ي مِنَ الْمُكْرَم۪ينَ ﴿٢٧﴾

**13.** Tu mîsala gelê wî bajarî bide wan. Wê demê pêxember ji wan re hatibûn.

**14.** Wê demê ligel ku me ji wan re du qasid şandibûn jî wan herduyan derewandibûn. Me jî bi yekî sêyem re piştgirî dabû wan. Gotin: “Bêşik, em qasidên ku ji we re hatine şandin in.”

**15.** Gotin: “Hûn, bitenê weke me mirov in. Rahmân, qet tu tiştî danexistîye. Hûn bes derewan dikin.”

**16.** Gotin: “Rabbê me dizane ku em ji we re hatine şandin.”

**17.** “Wezîfeya me bitenê teblîxeke vikîvekirî ye.”

**18.** Gotin: “Em, we bêyom/bêoxir dihesibînin. Hûn dev ji (gotinên xwe) bernedin, bêguman em ê we bidin ber keviran û wê ji me ezabekî biêş û jan bi we bikeve.”

**19.** Gotin: “Bêoxirîya we bi we re ye. Ji bo ku şîret li we hatîye kirin loma (hûn me bêoxir dihesibînin)? Berevajî hûn, qewmekî ji hedê xwe borî û ser xwe de çûyî ne.”

**20.** Zilamek ji wî alîyê bajêr ve bezîya hat û got: “Ya qewmê min! Tabiê van qasidên şandî/mursel bibin.”

**21.** “Tabiê wan kesên ku ji we qet tu heqdestekî naxwazin bibin. Ewana, kesên ku gihîştine hîdayetê ne.”

**22.** (Ka bibêjin:) “Ma çi li min qewimîye ku ez îbadetê li wî yê ku min xuliqandîye nekim? Hûn hemû bi bal wî ve bên vegerandin.”

**23.** “Erê ma ez ê ji xeynî Allah hin îlâhên din bigirim? Eger Rahmân ji bo min zerarekî daxwaz bike, şefaeta wan qet tu feyde nade û nikarin min xelas jî bikin.”

**24.** “Wê gavê ez ê, di nava rêşaşîtîyekî eşkere de bim.”

**25.** “Bêguman min, îman bi Rabbê we anî. Êdî guhdarîya min bikin.”

**26.** (Jê re) hat gotin: “Bikeve cennetê.” Got: “Xwezî qewmê min bizaniba...”

**27.** “Ku Rabbê min mexfîretê li min kiriye û ez kirime ji yên hatine îkramkirin.”




وَمَٓا اَنْزَلْنَا عَلٰى قَوْمِه۪ مِنْ بَعْدِه۪ مِنْ جُنْدٍ مِنَ السَّمَٓاءِ
وَمَا كُنَّا مُنْزِل۪ينَ ﴿٢٨﴾ اِنْ كَانَتْ اِلَّا صَيْحَةً وَاحِدَةً فَاِذَا
هُمْ خَامِدُونَ ﴿٢٩﴾ يَا حَسْرَةً عَلَى الْعِبَادِۚ مَا يَاْت۪يهِمْ مِنْ رَسُولٍ
اِلَّا كَانُوا بِه۪ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٣٠﴾ اَلَمْ يَرَوْا كَمْ اَهْلَكْنَا
قَبْلَهُمْ مِنَ الْقُرُونِ اَنَّهُمْ اِلَيْهِمْ لَا يَرْجِعُونَ ﴿٣١﴾ وَاِنْ كُلٌّ
لَمَّا جَم۪يعٌ لَدَيْنَا مُحْضَرُونَ ﴿٣٢﴾ وَاٰيَةٌ لَهُمُ الْاَرْضُ الْمَيْتَةُۚ
اَحْيَيْنَاهَا وَاَخْرَجْنَا مِنْهَا حَبًّا فَمِنْهُ يَاْكُلُونَ ﴿٣٣﴾ وَجَعَلْنَا
ف۪يهَا جَنَّاتٍ مِنْ نَخ۪يلٍ وَاَعْنَابٍ وَفَجَّرْنَا ف۪يهَا مِنَ الْعُيُونِۙ ﴿٣٤﴾
لِيَاْكُلُوا مِنْ ثَمَرِه۪ۙ وَمَا عَمِلَتْهُ اَيْد۪يهِمْۜ اَفَلَا يَشْكُرُونَ ﴿٣٥﴾
سُبْحَانَ الَّذ۪ي خَلَقَ الْاَزْوَاجَ كُلَّهَا مِمَّا تُنْبِتُ الْاَرْضُ
وَمِنْ اَنْفُسِهِمْ وَمِمَّا لَا يَعْلَمُونَ ﴿٣٦﴾ وَاٰيَةٌ لَهُمُ الَّيْلُۚ نَسْلَخُ مِنْهُ
النَّهَارَ فَاِذَا هُمْ مُظْلِمُونَۙ ﴿٣٧﴾ وَالشَّمْسُ تَجْر۪ي لِمُسْتَقَرٍّ لَهَاۜ
ذٰلِكَ تَقْد۪يرُ الْعَز۪يزِ الْعَل۪يمِۜ ﴿٣٨﴾ وَالْقَمَرَ قَدَّرْنَاهُ مَنَازِلَ حَتّٰى
عَادَ كَالْعُرْجُونِ الْقَد۪يمِ ﴿٣٩﴾ لَا الشَّمْسُ يَنْبَغ۪ي لَهَٓا اَنْ تُدْرِكَ
الْقَمَرَ وَلَا الَّيْلُ سَابِقُ النَّهَارِۜ وَكُلٌّ ف۪ي فَلَكٍ يَسْبَحُونَ ﴿٤٠﴾

**28.** Me piştî wî, ji bo qewmê wî (helak bikin) ji esman herçî yek artêşek danexist. Em danaxînin jî.

**29.** (Ya ku wan helak kir) bitenê qîrînek bû. (Tu çi bibînî. Mala wan mîrat bû, ocaxa wan) tefîyan (tune bûn û çûn).

**30.** Xwelî li serê (wan) îbadan be! Çi dema ji wan re qasidek bê, hema tinazên xwe pê dikirin.

**31.** Qey ew wan qewmên berîya wan ku me ew helak kirine û careke din li wan nevegerîyane, nabînin?

**32.** Muheqeq ew hemû wê di hizûra me de bên amade kirin.

**33.** Axa mirî, ji bo wan ayetek e. Me heyat da wê û hebên/teneyên ku jê dixwin jê derxist.

**34.** Me tê de bexçeyên xurman û rezên tirî ava kir û me li wê derê kanîyan herikandin.

**35.** Ji bo ku ew ji fêkîyên wan û ji keda destê xwe bixwin... Hêj jî şikur nakin?

**36.** Ew (Allahê) ku ji tiştên ax heşîn dike û ji nefsên wan û ji ew (heyîn) ên pê nizanin cot bi cot xuliqandîye, ji hemû kêmasîyan munezzeh e/pak e.

**37.** Şev jî ji bo wan ayetek e. Em rojê ji ser wê radikêşin. (Tu dibînî ku) di nava tarîtîyê de mane.

**38.** Roj jî bi rêgeha xwe ya diyarbûyî û bi cihê sekna xwe ve diherike. Ev, teqdîra (wî Allah ê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**39.** Me ji bo heyvê jî hin menzîlên seknê heyî kirin. Paşê ew dikeve şikilê çiqilê dara xurmê (dibe weke kevana zirav).

**40.** Ne roj digihîje heyvê û ne jî şev dikare bikeve pêşîya rojê. Hemû di rêgehekî de diherikin.

وَاٰيَةٌ لَهُمْ اَنَّا حَمَلْنَا ذُرِّيَّتَهُمْ فِي الْفُلْكِ الْمَشْحُونِۙ ﴿٤١﴾ وَخَلَقْنَا
لَهُمْ مِنْ مِثْلِه۪ مَا يَرْكَبُونَ ﴿٤٢﴾ وَاِنْ نَشَأْ نُغْرِقْهُمْ فَلَا صَر۪يخَ
لَهُمْ وَلَا هُمْ يُنْقَذُونَۙ ﴿٤٣﴾ اِلَّا رَحْمَةً مِنَّا وَمَتَاعًا اِلٰى ح۪ينٍ ﴿٤٤﴾
وَاِذَا ق۪يلَ لَهُمُ اتَّقُوا مَا بَيْنَ اَيْد۪يكُمْ وَمَا خَلْفَكُمْ لَعَلَّكُمْ
تُرْحَمُونَ ﴿٤٥﴾ وَمَا تَأْت۪يهِمْ مِنْ اٰيَةٍ مِنْ اٰيَاتِ رَبِّهِمْ اِلَّا كَانُوا
عَنْهَا مُعْرِض۪ينَ ﴿٤٦﴾ وَاِذَا ق۪يلَ لَهُمْ اَنْفِقُوا مِمَّا رَزَقَكُمُ اللّٰهُۙ
قَالَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا لِلَّذ۪ينَ اٰمَنُوا اَنُطْعِمُ مَنْ لَوْ يَشَاءُ اللّٰهُ
اَطْعَمَهُۗ اِنْ اَنْتُمْ اِلَّا ف۪ي ضَلَالٍ مُب۪ينٍ ﴿٤٧﴾ وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا
الْوَعْدُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ ﴿٤٨﴾ مَا يَنْظُرُونَ اِلَّا صَيْحَةً وَاحِدَةً
تَأْخُذُهُمْ وَهُمْ يَخِصِّمُونَ ﴿٤٩﴾ فَلَا يَسْتَط۪يعُونَ تَوْصِيَةً
وَلَٓا اِلٰٓى اَهْلِهِمْ يَرْجِعُونَ ﴿٥٠﴾ وَنُفِخَ فِي الصُّورِ فَاِذَا هُمْ مِنَ الْاَجْدَاثِ
اِلٰى رَبِّهِمْ يَنْسِلُونَ ﴿٥١﴾ قَالُوا يَا وَيْلَنَا مَنْ بَعَثَنَا مِنْ مَرْقَدِنَاۜ
هٰذَا مَا وَعَدَ الرَّحْمٰنُ وَصَدَقَ الْمُرْسَلُونَ ﴿٥٢﴾ اِنْ كَانَتْ
اِلَّا صَيْحَةً وَاحِدَةً فَاِذَا هُمْ جَم۪يعٌ لَدَيْنَا مُحْضَرُونَ ﴿٥٣﴾ فَالْيَوْمَ
لَا تُظْلَمُ نَفْسٌ شَيْـًٔا وَلَا تُجْزَوْنَ اِلَّا مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٥٤﴾

**41.** Ev jî ji bo wan ayetek e ku me zurîyeta wan di keştîya dagirtî de kişandîye.

**42.** Ji bo siwar bibin xuliqandina (keştî û) tiştên weke wan jî (ji bo wan ayet in).

**43.** Em bixwazin (keştîyan di avê de naherikînin û) wan dixeniqînin. Ne tu kes dikare xwe bigihîjîne alîkarîya wan û ne jî tên xelaskirin.

**44.** Ji ber rahmeta ku me li wan kiriye heta demeke diyarkirî (ku ecelê wan e) îstîfadekirina me ne tê de.

**45.** Dema ji wan re tê gotin: "Xwe ji (ezab) a li pêşîya we ye û ji (gunehên berê) ya ku li pişt we maye bitirsin û xwe biparêzin da ku hûn bigihîjin merhametê" (lê qet gûh nadin).

**46.** Dema ayetek ji ayetên Rabbê wan ji wan re tê, teqez jê rû vedigerînin.

**47.** Dema ji wan re tê gotin: "Ji rizqê ku Allah daye we înfaq bikin." ew ên kafir ji mumînan re wiha gotin: "Ew kesên eger Allah bixwesta wê wan têr bikira, ma em ê wan têr bikin? Hûn, di rêşaşîtîyekî vikîvekirî de ne."

**48.** Dibêjin: "Eger hûn di gotina xwe de rast in, wê weada (ezabê) ku we (li me) kiribû kengê ye? (Bila bê em bibînin!)"

**49.** Tiştê ku lihêvîyê ne bitenê qîrînek e. Çaxê (di navbera xwe de) nîqaş dikin ji nîşka ve bi wan digire.

**50.** Êdî ne dikarin wesîyetekî bikin û ne ji dikarin li malbatên xwe vegerin.

**51.** Li sûrê hatîye pifkirin. (Tu dibînî ku) ji gorên xwe derketine û bi lez ber bi Rabbê xwe ve diçin.

**52.** Dibêjin: "Hey wax li me! Kî em ji gorên ku demeke dirêj e em tê de razayî bûn rakirîye? Tiştê ku Rahmân wead kiriye ev e. (Fêm dibe ku) pêxemberan rast gotine. (Vejîna piştî mirinê û axîret heq e.)"

**53.** Bitenê qîrînek û hew! Hemû di heman demê de di hizûra me de tên amade kirin.

**54.** Îro, qet li tu nefsî neheqîyekî herî biçûk jî nayê kirin û ji xeynî kirinên xwe pê ve hûn tu gerew/berdêl nabînin.

اِنَّ اَصْحَابَ الْجَنَّةِ الْيَوْمَ فِي شُغُلٍ فَاكِهُونَ ۚ ﴿٥٥﴾
هُمْ وَاَزْوَاجُهُمْ فِي ظِلَالٍ عَلَى الْاَرَائِكِ مُتَّكِؤُنَ ﴿٥٦﴾ لَهُمْ فِيهَا
فَاكِهَةٌ وَلَهُمْ مَا يَدَّعُونَ ۚ ﴿٥٧﴾ سَلَامٌ قَوْلًا مِنْ رَبٍّ رَحِيمٍ ﴿٥٨﴾
وَامْتَازُوا الْيَوْمَ اَيُّهَا الْمُجْرِمُونَ ﴿٥٩﴾ اَلَمْ اَعْهَدْ اِلَيْكُمْ يَا بَنِي
اٰدَمَ اَنْ لَا تَعْبُدُوا الشَّيْطَانَ ۚ اِنَّهُ لَكُمْ عَدُوٌّ مُبِينٌ ۙ ﴿٦٠﴾ وَاَنِ
اعْبُدُونِي ۜ هٰذَا صِرَاطٌ مُسْتَقِيمٌ ﴿٦١﴾ وَلَقَدْ اَضَلَّ مِنْكُمْ جِبِلًّا
كَثِيرًا ۜ اَفَلَمْ تَكُونُوا تَعْقِلُونَ ﴿٦٢﴾ هٰذِهِ جَهَنَّمُ الَّتِي كُنْتُمْ
تُوعَدُونَ ﴿٦٣﴾ اِصْلَوْهَا الْيَوْمَ بِمَا كُنْتُمْ تَكْفُرُونَ ﴿٦٤﴾ اَلْيَوْمَ
نَخْتِمُ عَلٰى اَفْوَاهِهِمْ وَتُكَلِّمُنَا اَيْدِيهِمْ وَتَشْهَدُ اَرْجُلُهُمْ
بِمَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿٦٥﴾ وَلَوْ نَشَاءُ لَطَمَسْنَا عَلٰى اَعْيُنِهِمْ
فَاسْتَبَقُوا الصِّرَاطَ فَاَنّٰى يُبْصِرُونَ ﴿٦٦﴾ وَلَوْ نَشَاءُ لَمَسَخْنَاهُمْ
عَلٰى مَكَانَتِهِمْ فَمَا اسْتَطَاعُوا مُضِيًّا وَلَا يَرْجِعُونَ ﴿٦٧﴾
وَمَنْ نُعَمِّرْهُ نُنَكِّسْهُ فِي الْخَلْقِ ۜ اَفَلَا يَعْقِلُونَ ﴿٦٨﴾ وَمَا عَلَّمْنَاهُ
الشِّعْرَ وَمَا يَنْبَغِي لَهُ ۜ اِنْ هُوَ اِلَّا ذِكْرٌ وَقُرْاٰنٌ مُبِينٌ ۙ ﴿٦٩﴾
لِيُنْذِرَ مَنْ كَانَ حَيًّا وَيَحِقَّ الْقَوْلُ عَلَى الْكَافِرِينَ ﴿٧٠﴾

**55.** Bêguman wê rojê ehlê cennetê, di nav şahîyê de (bi nîmetên cennetê) meşxul in.

**56.** Ew û hevjînên wan di bin sîgehan de li ser textan paldayî ne.

**57.** Li wê derê ji bo wan fêkî û çi tiştê bixwazin heye.

**58.** Ji cem Rabbê pir bi merhamet ve ji wan re bidevkî “silav” heye.

**59.** (Allah dibêje:) “Gelî mucrîman! Hûn wiha veqetin.”

**60.** Gelî Zaroyên Âdem! Ma min li we wiha ferman nekiribû: “Ji şeytan re evdîtîyê/îbadetê nekin, ew neyarê we yê vikîvekirî ye.”?

**61.** “(Ma min negotibû) ji min (tenê) re evdîtîyê bikin. Rêya rasterast ev bixwe ye.”

**62.** “Sond be, ji we gelek civakan xerifand. Erê ma we qet aqil nedigirt.”

**63.** “Ha ev, cehennema ku ji we re hatîye weadkirin e.”

**64.** “Di berdêla kufra xwe de îro têkevin wê (cehennemê).”

**65.** Îro, em devên wan mohr dikin. (Guneh) ên bi dest xistine destên wan ji me re dibêjin û pîyên wan jî şahidî dikin.

**66.** Eger me bixwesta, me yê çavên wan bixitimandiba (kor bikira). (Ji bo rastîyê bibînin, wekî wan heywanên vir de wir de dibezin) bi rê ve li hev dibezîyan. (Em, ji dîtina heqîyê re bibûna asteng) wê çawa bidîtana?

**67.** Eger me bixwesta, me yê rûçikê wan di cihê xwe de bi heyînên din re biguhertiba. Êdî ne dikaribûn pêş ve herin û ne jî paş de vegerin.

**68.** Em umrê kî dirêj bikin, di xulixandinê de me ew serberjêr (piştî hêzdarîyê bi qelsbûnê ve û ji çaxê herî xweşik bi dema herî xerab ve) zivirandîye. (Nexwe bi gotina ‘Ez ê di pêş de bikim’ bila berpirsîyarîyên xwe nedin paş. Hêj ku hêz û quweta wan di cih de ye bila şayestane/bişirjawî evdîtîya Allah bikin.) Ma aqil nagirin?

**69.** Me helbest/şiîr hînê wî nekiriye, ev ne babetê wî ye jî. Ew, bitenê zikrek/şîretek û Qur'aneke vikîvekirî ye.

**70.** Heta ku (Qur'an) wan ên zindî hişyar bike û li ser kafiran soz/huccet (a Allah) heq bibe.

(Digel ku ev ayet di sûreya Yâsîn de dibore, pêkanîna “Beşekara/Sektora Yâsîn” û li ser mirîyan xwendina Yâsîn û bîranîna Qur'anê ji cenaze heta cenazeyekî din, bi rastî rewşeke ku îzaha wê pir zehmet e. Kitêbekî ji bo ku bê xwendin û bê jîyîn û pê cîhad bê kirin û yên zindî pê bêne hişyarkirin e, kêmkirînîya wê ya bi goristanan bi rastî ji nankorîyên herî mezin e.)

اَوَلَمْ يَرَوْا اَنَّا خَلَقْنَا لَهُمْ مِمَّا عَمِلَتْ اَيْدٖينَٓا اَنْعَامًا فَهُمْ لَهَا
مَالِكُونَ ﴿٧١﴾ وَذَلَّلْنَاهَا لَهُمْ فَمِنْهَا رَكُوبُهُمْ وَمِنْهَا يَاْكُلُونَ ﴿٧٢﴾
وَلَهُمْ فٖيهَا مَنَافِعُ وَمَشَارِبُ اَفَلَا يَشْكُرُونَ ﴿٧٣﴾ وَاتَّخَذُوا
مِنْ دُونِ اللّٰهِ اٰلِهَةً لَعَلَّهُمْ يُنْصَرُونَ ﴿٧٤﴾ لَا يَسْتَطٖيعُونَ نَصْرَهُمْ
وَهُمْ لَهُمْ جُنْدٌ مُحْضَرُونَ ﴿٧٥﴾ فَلَا يَحْزُنْكَ قَوْلُهُمْ اِنَّا نَعْلَمُ
مَا يُسِرُّونَ وَمَا يُعْلِنُونَ ﴿٧٦﴾ اَوَلَمْ يَرَ الْاِنْسَانُ اَنَّا خَلَقْنَاهُ مِنْ نُطْفَةٍ
فَاِذَا هُوَ خَصٖيمٌ مُبٖينٌ ﴿٧٧﴾ وَضَرَبَ لَنَا مَثَلًا وَنَسِيَ خَلْقَهُ قَالَ
مَنْ يُحْيِ الْعِظَامَ وَهِيَ رَمٖيمٌ ﴿٧٨﴾ قُلْ يُحْيٖيهَا الَّذٖٓي اَنْشَاَهَٓا اَوَّلَ مَرَّةٍ
وَهُوَ بِكُلِّ خَلْقٍ عَلٖيمٌ ﴿٧٩﴾ اَلَّذٖي جَعَلَ لَكُمْ مِنَ الشَّجَرِ الْاَخْضَرِ
نَارًا فَاِذَٓا اَنْتُمْ مِنْهُ تُوقِدُونَ ﴿٨٠﴾ اَوَلَيْسَ الَّذٖي خَلَقَ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ بِقَادِرٍ عَلٰٓى اَنْ يَخْلُقَ مِثْلَهُمْ بَلٰى وَهُوَ الْخَلَّاقُ الْعَلٖيمُ ﴿٨١﴾
اِنَّمَٓا اَمْرُهُٓ اِذَٓا اَرَادَ شَيْـًٔا اَنْ يَقُولَ لَهُ كُنْ فَيَكُونُ ﴿٨٢﴾
فَسُبْحَانَ الَّذٖي بِيَدِهٖ مَلَكُوتُ كُلِّ شَيْءٍ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٨٣﴾




**71.** Qey nedîtin? Me bi karê destên xwe ji bo feydeya wan (ji pez û ji dewaran) ajalan/heywanan xuliqand. Ew, xwedîtî li (van) heywanan dikin (di karên ku ji wan re sûdmend in de diemilînin).

**72.** Me (ew heywan) ji wan re stûxwar kirin. Hem siwareyên wan ji (van) heywanan in û hem jî ji wan dixwin.

**73.** Û di wan de, ji bo wan vexwarin û feyde (yên din) hene. Ma ew şikur nakin?

**74.** Bi hêvîya ku alîkarî li wan bê kirin, ji bo xwe ji xeynî Allah hin îlâhên din girtin.

**75.** (Ew ên ku ji xwe re îlâh girtine) nikarin alîkarîya wan bikin. Lê ew (muşrîk bixwe), ji bo ku îlâh girtine leşkerên amadekirî ne. (Leşkerbûna muşrîkan ya ji pûtên ku wek îlâh girtine ev e: Ji heywanên xwe û ji çandinîyên xwe ji bo wan jî par diveqetînin (6/En'am, 136) û zarokên xwe ji pûtan re qurban dikin (6/En'am, 137) û ji bo pûtên xwe nîqaş û şer dikin (21/Enbîya, 68; 25/Furqan, 42; 38/Sad, 6)).

**76.** Bila gotinên wan te xemgîn neke. Em bi ya ku ew vedişêrin jî û eşkere dikin jî dizanin.

**77.** Qey însan nabîne ku me ew ji dilopek av xuliqandîye? (Niha ew) bûye dijminekî vikîvekirî.

**78.** Xuliqandina xwe ji bîr kir û mîsal da me û wiha got: "Ma wê kî van hestîyên rizîyayî bivejîne?"

**79.** Bibêje: "Ew ê ku wî cara ewil heyî kiriye wê bivejîne. Ew, bi her cureya xuliqandinê dizane."

**80.** Ew (Allah) e ku ji dara hêşîn ji we re kiriye (şewateya) agirê. Hûn jî jê dişewitînin.

**81.** Ew ê erd û asîman xuliqandibe, ma ne qadir e ku yên wekî wan bixuliqîne? Helbet (qadir e). Ew, (yê ku pir dixuliqîne) Xellaq û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**82.** Dema ku tiştekî bixwaze, fermana wî ev e ku jê re bibêje: "Bibe!" Ew jî hema çêdibe.

**83.** Ew (Allah) ê ku desthilatî û serwerîyê di dest xwe de digire, ji hemû kêmasîyan munezzeh e. Hûn ê bi bal wî ve bêne vegerandin.

## 37. SÛREYA SAFFÂT

*(Sûreya Saffât, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sed û heştê û du (182) ayet e. )*

*Di Qur'anê de sûreya sî û heftemîn e. Sûre navê xwe ji peyva "Es-Saffât" ku di ayeta yekemîn de dibore sitendîye. Ev kelîme tê ser maneya "ew ên rêz bi rêz sef girtine." Du esasên ku di Qur'anê de hatîye dubarekirin di sûreya Saffât de bal hatîye kişandin. A yekem aqîdeya tewhîdê ye û ya duyem jî bawerîya axîretê ye ku ev jî di însan de şiûra berpirsîyarîyê pêk tîne. Behsa têkoşîna heq û batil ya di dirêjahîya dîrokê de jî dike. Ligel vê, ji ber ku bi gelek zorahîyan ve rû bi rû mabû, Rasûlullah (ass) ji alîyek ve tê teselî kirin û ji alîyê din ve jî ji bo pêşerojê omîd lê tê dayîn.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالصَّٓافَّاتِ صَفًّاۙ ﴿١﴾ فَالزَّاجِرَاتِ زَجْرًاۙ ﴿٢﴾ فَالتَّالِيَاتِ ذِكْرًاۙ ﴿٣﴾
اِنَّ اِلٰهَكُمْ لَوَاحِدٌۜ ﴿٤﴾ رَبُّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا وَرَبُّ
الْمَشَارِقِۜ ﴿٥﴾ اِنَّا زَيَّنَّا السَّمَٓاءَ الدُّنْيَا بِز۪ينَةِۨ الْكَوَاكِبِۙ ﴿٦﴾ وَحِفْظًا
مِنْ كُلِّ شَيْطَانٍ مَارِدٍۚ ﴿٧﴾ لَا يَسَّمَّعُونَ اِلَى الْمَلَاِ الْاَعْلٰى وَيُقْذَفُونَ
مِنْ كُلِّ جَانِبٍۗ ﴿٨﴾ دُحُورًا وَلَهُمْ عَذَابٌ وَاصِبٌۙ ﴿٩﴾ اِلَّا مَنْ خَطِفَ
الْخَطْفَةَ فَاَتْبَعَهُ شِهَابٌ ثَاقِبٌ ﴿١٠﴾ فَاسْتَفْتِهِمْ اَهُمْ اَشَدُّ خَلْقًا
اَمْ مَنْ خَلَقْنَاۜ اِنَّا خَلَقْنَاهُمْ مِنْ ط۪ينٍ لَازِبٍ ﴿١١﴾ بَلْ عَجِبْتَ وَيَسْخَرُونَۖ ﴿١٢﴾
وَاِذَا ذُكِّرُوا لَا يَذْكُرُونَۖ ﴿١٣﴾ وَاِذَا رَاَوْا اٰيَةً يَسْتَسْخِرُونَۖ ﴿١٤﴾ وَقَالُٓوا
اِنْ هٰذَٓا اِلَّا سِحْرٌ مُب۪ينٌۚ ﴿١٥﴾ ءَاِذَا مِتْنَا وَكُنَّا تُرَابًا وَعِظَامًا ءَاِنَّا
لَمَبْعُوثُونَۙ ﴿١٦﴾ اَوَاٰبَٓاؤُ۬نَا الْاَوَّلُونَۜ ﴿١٧﴾ قُلْ نَعَمْ وَاَنْتُمْ دَاخِرُونَۚ ﴿١٨﴾
فَاِنَّمَا هِيَ زَجْرَةٌ وَاحِدَةٌ فَاِذَا هُمْ يَنْظُرُونَ ﴿١٩﴾ وَقَالُوا يَا وَيْلَنَا هٰذَا
يَوْمُ الدّ۪ينِ ﴿٢٠﴾ هٰذَا يَوْمُ الْفَصْلِ الَّذ۪ي كُنْتُمْ بِه۪ تُكَذِّبُونَ ﴿٢١﴾
اُحْشُرُوا الَّذ۪ينَ ظَلَمُوا وَاَزْوَاجَهُمْ وَمَا كَانُوا يَعْبُدُونَۙ ﴿٢٢﴾ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ فَاهْدُوهُمْ اِلٰى صِرَاطِ الْجَح۪يمِ ﴿٢٣﴾ وَقِفُوهُمْ اِنَّهُمْ مَسْؤُ۫لُونَۙ ﴿٢٤﴾

1. Sond be; bi wan ên rêz bi rêz sef girtine,
2. Bi ew ên biqirecir diajon,
3. Bi ew ên zikrê dixwînin ku,
4. Îlâhê we (îlâhekî) yek û yekane ye.
(Di Qur'anê de ji bo têgeha/qewrama Îlâh û berfirehîya Kelîmeya Tewhîdê bnr: 21/Enbîya, 25)
5. Ew, Rabbê erd û esmanan û yên di navbera herduyan de ye. Rabbê rojhilatan e jî.



6. Bêguman me asîmana dinyayê bi stêrkan xemiland.
7. Û me wê (bi stêrkan) ji her şeytanê rikdar parastîye.
8. Ew nikarin guhdarîya Mele-î A'lâ/Cîvata Bilind bikin. (Dema dikin ku guhdarî bikin) ji her alîyê ve têne qewirandin (recimandin).
9. Tên def kirin/qewitandin. Ji wan re ezabekî bê dawî heye.
10. Lê eger yek (bi guhdarîyê) peyvekî bi dest bixe, wê gavê gilokê agir li pey dikeve.
11. Ka ji wan bipirse (em binêrin)! Ma qey ya herî zortir xuliqandina wan e an (weke erd û esman û çiya) mexluqatên me yên din in? Bêguman me ew ji herîyeke zeliqandî xuliqand.
12. Tu (bi pê nebawerîya wan a Qur'an û axîretê) şaş mayî. Lê ew tinazê xwe dikin.
13. Dema ku têne şîretkirin, şîret nagirin.
14. Wextê ku ayetek dibînin, ew dikin mijara tinazê.
15. Û dibêjin: "Ev, ji sêhreke vikîvekirî pê ve ne tiştekî din e."
16. "Ma dema em bimirin û bibin ax û hestî, qey em ê dîsa bên vejandin?"
17. "Bavûkalên me yên berê jî?"
18. Bibêje: "Erê, hûn ê bi stuxwarî û wek riswakirî (bên vejandin)."
19. Ew, bitenê yek qîrek e. (Bi carekî tu lê dinêrî ku, li derdorên xwe) vedinêrin.
20. Dibêjin: "Xwelî li serê me be! Ev, roja dîn/roja hisabê ye."
21. Ev, roja 'Fesl ê' ye (roja ji hev veqetînê ye) ku we ew, derewandibû.
22-23. Wan zilimkaran û hevalên wan (ên ku heman karî dikirin) û ew ên ji xeynî Allah îbadetê li wan dikirin li hev bicivînin! Wan bi rêya cehennemê ve bajon.
24. Wan bisekinînin, lewre ew wê bên pirsyarkirin.

مَا لَكُمْ لَا تَنَاصَرُونَ ﴿٢٥﴾ بَلْ هُمُ الْيَوْمَ مُسْتَسْلِمُونَ ﴿٢٦﴾ وَاَقْبَلَ
بَعْضُهُمْ عَلٰى بَعْضٍ يَتَسَٓاءَلُونَ ﴿٢٧﴾ قَالُٓوا اِنَّكُمْ كُنْتُمْ تَأْتُونَنَا
عَنِ الْيَمِينِ ﴿٢٨﴾ قَالُوا بَلْ لَمْ تَكُونُوا مُؤْمِنِينَۚ ﴿٢٩﴾ وَمَا كَانَ
لَنَا عَلَيْكُمْ مِنْ سُلْطَانٍۚ بَلْ كُنْتُمْ قَوْمًا طَاغِينَ ﴿٣٠﴾ فَحَقَّ عَلَيْنَا
قَوْلُ رَبِّنَٓاۗ اِنَّا لَذَٓائِقُونَ ﴿٣١﴾ فَاَغْوَيْنَاكُمْ اِنَّا كُنَّا غَاوِينَ ﴿٣٢﴾ فَاِنَّهُمْ
يَوْمَئِذٍ فِي الْعَذَابِ مُشْتَرِكُونَ ﴿٣٣﴾ اِنَّا كَذٰلِكَ نَفْعَلُ بِالْمُجْرِمِينَ ﴿٣٤﴾
اِنَّهُمْ كَانُٓوا اِذَا قِيلَ لَهُمْ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا اللّٰهُ يَسْتَكْبِرُونَۙ ﴿٣٥﴾ وَيَقُولُونَ
اَئِنَّا لَتَارِكُٓوا اٰلِهَتِنَا لِشَاعِرٍ مَجْنُونٍۜ ﴿٣٦﴾ بَلْ جَٓاءَ بِالْحَقِّ وَصَدَّقَ
الْمُرْسَلِينَ ﴿٣٧﴾ اِنَّكُمْ لَذَٓائِقُوا الْعَذَابِ الْاَلِيمِۚ ﴿٣٨﴾ وَمَا تُجْزَوْنَ
اِلَّا مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَۙ ﴿٣٩﴾ اِلَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَصِينَ ﴿٤٠﴾ اُولٰٓئِكَ لَهُمْ
رِزْقٌ مَعْلُومٌۙ ﴿٤١﴾ فَوَاكِهُۚ وَهُمْ مُكْرَمُونَۙ ﴿٤٢﴾ فِي جَنَّاتِ النَّعِيمِۙ ﴿٤٣﴾
عَلٰى سُرُرٍ مُتَقَابِلِينَ ﴿٤٤﴾ يُطَافُ عَلَيْهِمْ بِكَأْسٍ مِنْ مَعِينٍۙ ﴿٤٥﴾ بَيْضَٓاءَ
لَذَّةٍ لِلشَّارِبِينَۚ ﴿٤٦﴾ لَا فِيهَا غَوْلٌ وَلَا هُمْ عَنْهَا يُنْزَفُونَ ﴿٤٧﴾ وَعِنْدَهُمْ
قَاصِرَاتُ الطَّرْفِ عِينٌۙ ﴿٤٨﴾ كَاَنَّهُنَّ بَيْضٌ مَكْنُونٌ ﴿٤٩﴾ فَاَقْبَلَ بَعْضُهُمْ
عَلٰى بَعْضٍ يَتَسَٓاءَلُونَ ﴿٥٠﴾ قَالَ قَٓائِلٌ مِنْهُمْ اِنِّي كَانَ لِي قَرِينٌۙ ﴿٥١﴾

**25.** Çi ji we bûye? Hûn çima alîkarîya hev nakin?
**26.** (Nexêr!) Berevajî ew, îro teslîm bûne.
**27.** Berê xwe didin hev/li ser hev difitilin û berhemberê hev lêpirsînê dikin.
**28.** (Ji serokên xwe yên averêker re wiha dibêjin:) "Bêguman hûn, ji rastê vê nêzîkî me dibûn."
**29.** (Serokan) gotin: "(Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, ji xwe we îman neanîbû."
**30.** "Tu otorîteya me ya li ser we tune bû. (Me zorê li we nekir.) Lê belê hûn bi xwe qewmekî har bûn."
**31.** "Soza/hukmê (ezabê) ya Rabbê me li ser me heq bû. Bêguman em jî (ezab) ditamînin."
**32.** "Belê me we xerifand (û xiste vê rewşê). Lewra em bi xwe jî kesên har bûn."
**33.** Wê rojê ew di ezab de hevpar/şirîk in.
**34.** Em, bi gunehkarên mucrîm/sûcdar ha wisan dikin.
**35.** Dema ku ji wan re "Laîlâheîllallah" dihate gotin xwe qure dikirin.
**36.** Digotin: "Erê ma em ê ji bo şairekî dîn dev ji îlâhên xwe berdin?"
**37.** (Nexêr! Ew ne şair û ne jî dîn e!) Berevajî, ew bi heq hatîye û pêxemberên (berîya wî hatine şandin) rastandîye.
**38.** Bêguman hûn ê ezabekî biêş û jan bitamînin.
**39.** Hûn bi ya ku we kiriye pê ve berdêlekî din nabînin.
**40.** Evdên Allah yên ku muxlas/dilpak/xwedî îxlâs in, ne tê de.
**41.** Ji bo wan rizqekî têzanîn heye.
**42.** Fêkîyan... Ew yên îkrambûyî ne.
**43.** Di cennetên Naîm (bihiştên nîmetan) de ne.
**44.** Li pêşberî hev, li ser textan (paldayî) ne.
**45.** Bi qedehên ku ji kanîyê hatine tijekirin li derdora wan tên gerandin.
**46.** (Di nava wan qedehan de) vexwarineke spî ku lezzetê dide vexwaran heye.
**47.** Di wê vexwarinê de ne serêşek (dikşînin) û ne jî serxweş dibin.
**48.** Li cem wan, hevjînên çavxezal hene ku rênîna wan tenê li ser mêrê wan in
**49.** Tu dibêjî qey ew durrên veşartî ne.
**50.** Berê xwe didin hev/li ser hev difitilin û berhemberê hev lêpirsînê dikin,
**51.** Ji nav wan peyvdarek wiha dibêje: "Birastî hevalekî min hebû."

يَقُولُ اَئِنَّكَ لَمِنَ الْمُصَدِّقِينَ ﴿٥٢﴾ ءَاِذَا مِتْنَا وَكُنَّا تُرَابًا
وَعِظَامًا ءَاِنَّا لَمَدِينُونَ ﴿٥٣﴾ قَالَ هَلْ اَنْتُمْ مُطَّلِعُونَ ﴿٥٤﴾ فَاطَّلَعَ
فَرَاٰهُ ف۪ي سَوَٓاءِ الْجَح۪يمِ ﴿٥٥﴾ قَالَ تَاللّٰهِ اِنْ كِدْتَ لَتُرْد۪ينِۙ ﴿٥٦﴾
وَلَوْلَا نِعْمَةُ رَبّ۪ي لَكُنْتُ مِنَ الْمُحْضَر۪ينَ ﴿٥٧﴾ اَفَمَا نَحْنُ
بِمَيِّت۪ينَۙ ﴿٥٨﴾ اِلَّا مَوْتَتَنَا الْاُو۫لٰى وَمَا نَحْنُ بِمُعَذَّب۪ينَ ﴿٥٩﴾ اِنَّ هٰذَا
لَهُوَ الْفَوْزُ الْعَظ۪يمُ ﴿٦٠﴾ لِمِثْلِ هٰذَا فَلْيَعْمَلِ الْعَامِلُونَ ﴿٦١﴾ اَذٰلِكَ
خَيْرٌ نُزُلًا اَمْ شَجَرَةُ الزَّقُّومِ ﴿٦٢﴾ اِنَّا جَعَلْنَاهَا فِتْنَةً لِلظَّالِم۪ينَ ﴿٦٣﴾
اِنَّهَا شَجَرَةٌ تَخْرُجُ ف۪ٓي اَصْلِ الْجَح۪يمِۙ ﴿٦٤﴾ طَلْعُهَا كَاَنَّهُ رُؤُ۫سُ
الشَّيَاط۪ينِ ﴿٦٥﴾ فَاِنَّهُمْ لَاٰكِلُونَ مِنْهَا فَمَالِؤُ۫نَ مِنْهَا الْبُطُونَۜ ﴿٦٦﴾
ثُمَّ اِنَّ لَهُمْ عَلَيْهَا لَشَوْبًا مِنْ حَم۪يمٍۚ ﴿٦٧﴾ ثُمَّ اِنَّ مَرْجِعَهُمْ لَاِلَى
الْجَح۪يمِ ﴿٦٨﴾ اِنَّهُمْ اَلْفَوْا اٰبَٓاءَهُمْ ضَٓالّ۪ينَۙ ﴿٦٩﴾ فَهُمْ عَلٰٓى اٰثَارِهِمْ
يُهْرَعُونَ ﴿٧٠﴾ وَلَقَدْ ضَلَّ قَبْلَهُمْ اَكْثَرُ الْاَوَّل۪ينَۙ ﴿٧١﴾ وَلَقَدْ
اَرْسَلْنَا ف۪يهِمْ مُنْذِر۪ينَ ﴿٧٢﴾ فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُنْذَر۪ينَۙ ﴿٧٣﴾
اِلَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَص۪ينَ۟ ﴿٧٤﴾ وَلَقَدْ نَادٰينَا نُوحٌ فَلَنِعْمَ
الْمُج۪يبُونَۘ ﴿٧٥﴾ وَنَجَّيْنَاهُ وَاَهْلَهُ مِنَ الْكَرْبِ الْعَظ۪يمِۘ ﴿٧٦﴾

**52.** Digot: “Ma tu jî ji wan kesan î ku (jiyana axîretê) tesdîq dikin?”
**53.** “Ma dema em bimirin û bibin ax û hestî, em ê berdêla amelên xwe bistînin?”
**54.** “Hûn jî dixwazin bibînin (ka ew di çi rewşê de ye)?”
**55.** Lê nihêrt û wî di nîvê agir de dît.
**56.** Got: “Sond bi Allah be ku, hindik mabû te min jî bixistana (cihê ku tu tê de yî).”
**57.** Eger nîmetên Rabbê min (li ser min) nebûya, teqez ez jî dibûm ji wan amadekirî (yên cehennemê).”
**58.** “Nexwe em ê careke din nemirin, ne wisan?”
**59.** “Em ê careke tenê bimirin û em êdî nayên ezabdayînê jî ne wisan?”
**60.** Bêguman ev, (ha ev bixwe) qezencek û rizgarîyeke mezin e.
**61.** Ew ên wê bişixulin bila ji bo vê bixebitin.
**62.** (Aniha bibêjin:) Ezimandineke/mêvandarîyeke wiha bixêrtir e an jî dara zequmê?
**63.** Me ew, ji bo zilimkaran re kiriye fitne.
**64.** Bêguman ew, darek e ku binê dojehê de hêşîn dibe.
**65.** Fêkîyên wê, wekî serên şeytanan e.
**66.** Bêguman ew, wê jê bixwin û wê zikên xwe (ji wê) tije bikin.

**67.** Piştî wê (xwarina zeqûmê) de, ji wan re vexwarineke kelandî ya têkilek heye.
**68.** Paşê cihê ku lê vedigerin helbet, wê agirê dojehê be.
**69.** Ya rast ev e ku; wan bavûkalên xwe wek rêşaşan dîtin.
**70.** Ew bixwe jî di şopa wan de dibezîyan.
**71.** Sond be berîya wan, gelek qewmên berê jî averê bibûn.
(Li ser vegotinên Allah (ac) ya der heqê piranî û kêmanîyê de bnr. 11/Hûd, 40)
**72.** Sond be, me hişyarkeran şandibû navbera wan.
**73.** Li aqûbeta wan ên hatine hişyarkirin çawa bûye, ka binêre!
**74.** Ji xeynî evdên Allah yên ku muxlas/dilpak/xwedî îxlâs in, ne tê de.
**75.** Sond be, Nûh ji me re lavahî kiribû. (Me) çi xweş bersiv dabûyê.
**76.** Me ew û malbata wî ji derdekî/ji tengezarîyekî mezin xelas kiribû.

وَجَعَلْنَا ذُرِّيَّتَهُ هُمُ الْبَاقِينَ ﴿٧٧﴾ وَتَرَكْنَا عَلَيْهِ فِي الْاٰخِرِينَ ﴿٧٨﴾
سَلَامٌ عَلٰى نُوحٍ فِي الْعَالَمِينَ ﴿٧٩﴾ اِنَّا كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِنِينَ ﴿٨٠﴾
اِنَّهُ مِنْ عِبَادِنَا الْمُؤْمِنِينَ ﴿٨١﴾ ثُمَّ اَغْرَقْنَا الْاٰخَرِينَ ﴿٨٢﴾
وَاِنَّ مِنْ شِيعَتِهِ لَاِبْرٰهِيمَ ﴿٨٣﴾ اِذْ جَاءَ رَبَّهُ بِقَلْبٍ سَلِيمٍ ﴿٨٤﴾
اِذْ قَالَ لِاَبِيهِ وَقَوْمِهِ مَاذَا تَعْبُدُونَ ﴿٨٥﴾ اَئِفْكًا اٰلِهَةً دُونَ اللّٰهِ تُرِيدُونَ ﴿٨٦﴾
فَمَا ظَنُّكُمْ بِرَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿٨٧﴾ فَنَظَرَ نَظْرَةً فِي النُّجُومِ ﴿٨٨﴾ فَقَالَ
اِنِّي سَقِيمٌ ﴿٨٩﴾ فَتَوَلَّوْا عَنْهُ مُدْبِرِينَ ﴿٩٠﴾ فَرَاغَ اِلٰٓى اٰلِهَتِهِمْ
فَقَالَ اَلَا تَاْكُلُونَ ﴿٩١﴾ مَا لَكُمْ لَا تَنْطِقُونَ ﴿٩٢﴾ فَرَاغَ عَلَيْهِمْ
ضَرْبًا بِالْيَمِينِ ﴿٩٣﴾ فَاَقْبَلُٓوا اِلَيْهِ يَزِفُّونَ ﴿٩٤﴾ قَالَ اَتَعْبُدُونَ
مَا تَنْحِتُونَ ﴿٩٥﴾ وَاللّٰهُ خَلَقَكُمْ وَمَا تَعْمَلُونَ ﴿٩٦﴾ قَالُوا ابْنُوا لَهُ
بُنْيَانًا فَاَلْقُوهُ فِي الْجَحِيمِ ﴿٩٧﴾ فَاَرَادُوا بِهِ كَيْدًا فَجَعَلْنَاهُمُ
الْاَسْفَلِينَ ﴿٩٨﴾ وَقَالَ اِنِّي ذَاهِبٌ اِلٰى رَبِّي سَيَهْدِينِ ﴿٩٩﴾ رَبِّ هَبْ لِي
مِنَ الصَّالِحِينَ ﴿١٠٠﴾ فَبَشَّرْنَاهُ بِغُلَامٍ حَلِيمٍ ﴿١٠١﴾ فَلَمَّا بَلَغَ مَعَهُ السَّعْيَ
قَالَ يَا بُنَيَّ اِنِّٓي اَرٰى فِي الْمَنَامِ اَنِّٓي اَذْبَحُكَ فَانْظُرْ مَاذَا تَرٰى
قَالَ يَٓا اَبَتِ افْعَلْ مَا تُؤْمَرُ سَتَجِدُنِٓي اِنْ شَٓاءَ اللّٰهُ مِنَ الصَّابِرِينَ ﴿١٠٢﴾

**77.** Me zurîyeta wî mayî (yên li ser rûyê erde) hişt.

**78.** Paşê me navê wî di navbera wan ên pey de tên re (ji bo ku wî bixêr bi bîr bînin me nav û dengekî xweşik) danî/berda.

**79.** Di nava aleman de silav li Nûh be.

**80.** Muheqeq em, muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin wiha xelat dikin.

**81.** Bêguman ew, ji evdên me yên mûmîn bû.

**82.** Paşê me ew ên (di tofanê de) xeniqandin.

**83.** Bêşik Îbrahîm jî ji alîgirên wî bû.

**84.** Dema bi qelbekî selîm/dilpak hate cem Rabbê xwe.
(Bnr. 26/Şûarâ, 88-89)

**85.** Gava ku ji bavê xwe û gelê xwe re gotibû: “Hûn ji çi re îbadet dikin?”

**86.** Ma hûn derewan lihev tînin û ji xeynî Allah hin îlâhên din digirin?

**87.** Der barê Rabbê alemê de hizra we/zena we çi ye? (Hûn dibêjin qey wê vê amelê we bê ceza bihêle?)”

**88.** Berê xwe da stêrkan.

**89.** Got: “Ez nexweşim.”

**90.** Berê xwe jê vegerandin û pişta xwe dane û çûn.

**91.** (Dema kesek nema) berê xwe da îlâhên wan û wiha got: “Ka hûn (ji van xwarinan) naxwin?”

**92.** “Çi dibe ji we? Hûn napeyivin?”

**93.** (Axir) beralîyê wan bû/bere xwe da wan û bi destê xwe yê rastê derbekî danî wan.

**94.** (Însanan) bi lezûbez berê xwe dane wî.

**95.** Got: “Hûn îbadet li wan tiştên ku hûn bi destên xwe diterişînin dikin?”

**96.** “Lê ew ê ku hûn jî û ya ku we çêkiriye jî Allah xuliqandîye.”

**97.** Gotin: “Ji bo wî avahîyeke bilind lê bikin. Paşê wî bavêjin nava agir.”

**98.** Wan xwest ku kemîn jê re deynin. Me wan kir ji riswakeran.

**99.** Got: “Ez biçim bal Rabbê xwe ve. Bêşik ew ê min bigihîne ser rêya rast.”

**100.** “Rabbê min, tu ji salihan (ewladekî) bidî min.”

**101.** Me jî ew, mizgîna zarokekî (helîm) dayê.

**102.** Dema zarok gihîşte çaxa ku pê re bigere û ligel wî kar bike, wiha got: “Kurê min! Ez di xewna xwe de dibînim ku min tu serjê dikir. Ka tu (li ser vê mijarê) çi dibejî? (Îsmaîl) got: “Bavê min! Ew tiştê ku tu pê hatî fermankirin pêk bîne. Înşaallah tu yê min ji sebirvanan bibînî.”

فَلَمَّٓا اَسْلَمَا وَتَلَّهُ لِلْجَب۪ينِۚ ﴿١٠٣﴾ وَنَادَيْنَاهُ اَنْ يَٓا اِبْرٰه۪يمُۙ ﴿١٠٤﴾
قَدْ صَدَّقْتَ الرُّءْيَاۚ اِنَّا كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِن۪ينَ ﴿١٠٥﴾
اِنَّ هٰذَا لَهُوَ الْبَلٰٓؤُا الْمُب۪ينُ ﴿١٠٦﴾ وَفَدَيْنَاهُ بِذِبْحٍ عَظ۪يمٍ ﴿١٠٧﴾
وَتَرَكْنَا عَلَيْهِ فِي الْاٰخِر۪ينَ ﴿١٠٨﴾ سَلَامٌ عَلٰٓى اِبْرٰه۪يمَ ﴿١٠٩﴾
كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِن۪ينَ ﴿١١٠﴾ اِنَّهُ مِنْ عِبَادِنَا الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿١١١﴾
وَبَشَّرْنَاهُ بِاِسْحٰقَ نَبِيًّا مِنَ الصَّالِح۪ينَ ﴿١١٢﴾ وَبَارَكْنَا عَلَيْهِ
وَعَلٰٓى اِسْحٰقَۜ وَمِنْ ذُرِّيَّتِهِمَا مُحْسِنٌ وَظَالِمٌ لِنَفْسِه۪ مُب۪ينٌ ﴿١١٣﴾
وَلَقَدْ مَنَنَّا عَلٰى مُوسٰى وَهٰرُونَۚ ﴿١١٤﴾ وَنَجَّيْنَاهُمَا وَقَوْمَهُمَا
مِنَ الْكَرْبِ الْعَظ۪يمِۚ ﴿١١٥﴾ وَنَصَرْنَاهُمْ فَكَانُوا هُمُ الْغَالِب۪ينَۚ ﴿١١٦﴾
وَاٰتَيْنَاهُمَا الْكِتَابَ الْمُسْتَب۪ينَۚ ﴿١١٧﴾ وَهَدَيْنَاهُمَا الصِّرَاطَ
الْمُسْتَق۪يمَۚ ﴿١١٨﴾ وَتَرَكْنَا عَلَيْهِمَا فِي الْاٰخِر۪ينَ ﴿١١٩﴾ سَلَامٌ
عَلٰى مُوسٰى وَهٰرُونَ ﴿١٢٠﴾ اِنَّا كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِن۪ينَ ﴿١٢١﴾
اِنَّهُمَا مِنْ عِبَادِنَا الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿١٢٢﴾ وَاِنَّ اِلْيَاسَ لَمِنَ الْمُرْسَل۪ينَۜ ﴿١٢٣﴾
اِذْ قَالَ لِقَوْمِه۪ٓ اَلَا تَتَّقُونَ ﴿١٢٤﴾ اَتَدْعُونَ بَعْلًا وَتَذَرُونَ
اَحْسَنَ الْخَالِق۪ينَۙ ﴿١٢٥﴾ اَللّٰهَ رَبَّكُمْ وَرَبَّ اٰبَٓائِكُمُ الْاَوَّل۪ينَ ﴿١٢٦﴾

**103.** Dema herdu (ji emrê Allah re) teslîm bûn û (Îsmaîl) li ser enîya wî dirêj kir/gêr kir.

**104.** Me wiha gazî wî kir: “Ya Îbrahîm!”

**105.** “(Bi vê tevgera xwe) te xewn tesdîq kir. Bêguman em muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin wiha xelat dikin.”

**106.** Bêguman ev a ha, îmtihanekî eşkere bû.

**107.** Me berdêla wî (Îsmaîl), wek fidye qurbaneke mezin da.

**108.** Me navê wî di navbera wan ên pey de tên re (ji bo ku wî bixêr bi bîr bînin me dengekî xweşik) danî/berda.

**109.** Silav li ser Îbrahîm be!

**110.** Em, muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin ha wiha xelat dikin.

**111.** Bêguman ew, ji evdên me yên mûmîn bû.

**112.** Me, ji salihan wek pêxemberek mizgîna Îshaq da wî.

**113.** Me di ser wî û Îshaq de bereket barand. Ji zurîyeta herduyan hinek muhsîn/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin hene. Hinekên ku bi eşkerehî zilim li nefsa xwe dikin jî...

**114.** Sond be, me qencîyê li Mûsa û Harûn jî kiribû.

**115.** Me ew her duyan û qewmê wan ji derdekî/ji tengasîyekî mezin rizgar kiribû.

**116.** Me alîkarîya wan kiribû. (Herwiha) ew serkeftî bûn.

**117.** Me Kitêbeke ku vikîvekirî ye da her duyan

**118.** Me her duyan li ser rêya rasterast hîdayet kir.

**119.** Me navê wî di navbera wan ên pey de tên re (ji bo ku wî bixêr bi bîr bînin me dengekî xweşik) danî/berda.

**120.** Silav li ser Mûsa û Harûn be.

**121.** Bêguman em, muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin, ha wiha xelat dikin.

**122.** Ew herdu ji evdên me yên mûmîn bûn.

**123.** Muheqeq Îlyas jî ji pêxemberên mursel e/şandî ye.

**124.** Wê demê ji gelê xwe re got: “Ma hûn (ji Allah) natirsin û xwe biparêzin?”

**125.** “Hûn lavahîyê bi (pûta) Ba’l dikin û ma qey hûn wî (Allah) ê ku xweşiktirê xaliqan e terk dikin?”

**126.** “Ew Allahê ku Rabbê we û bavûkalên we yên berê ye?!”

فَكَذَّبُوهُ فَاِنَّهُمْ لَمُحْضَرُونَۙ ﴿١٢٧﴾ اِلَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَصِينَ ﴿١٢٨﴾
وَتَرَكْنَا عَلَيْهِ فِي الْاٰخِرِينَ ﴿١٢٩﴾ سَلَامٌ عَلٰٓى اِلْ يَاسِينَ ﴿١٣٠﴾ اِنَّا
كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِنِينَ ﴿١٣١﴾ اِنَّهُ مِنْ عِبَادِنَا الْمُؤْمِنِينَ ﴿١٣٢﴾
وَاِنَّ لُوطًا لَمِنَ الْمُرْسَلِينَۜ ﴿١٣٣﴾ اِذْ نَجَّيْنَاهُ وَاَهْلَهُٓ اَجْمَعِينَۙ ﴿١٣٤﴾
اِلَّا عَجُوزًا فِي الْغَابِرِينَ ﴿١٣٥﴾ ثُمَّ دَمَّرْنَا الْاٰخَرِينَ ﴿١٣٦﴾ وَاِنَّكُمْ
لَتَمُرُّونَ عَلَيْهِمْ مُصْبِحِينَۙ ﴿١٣٧﴾ وَبِالَّيْلِۜ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿١٣٨﴾ وَاِنَّ
يُونُسَ لَمِنَ الْمُرْسَلِينَۜ ﴿١٣٩﴾ اِذْ اَبَقَ اِلَى الْفُلْكِ الْمَشْحُونِۙ ﴿١٤٠﴾
فَسَاهَمَ فَكَانَ مِنَ الْمُدْحَضِينَۚ ﴿١٤١﴾ فَالْتَقَمَهُ الْحُوتُ
وَهُوَ مُلِيمٌ ﴿١٤٢﴾ فَلَوْلَٓا اَنَّهُ كَانَ مِنَ الْمُسَبِّحِينَۙ ﴿١٤٣﴾ لَلَبِثَ
فِي بَطْنِهِٓ اِلٰى يَوْمِ يُبْعَثُونَ ﴿١٤٤﴾ فَنَبَذْنَاهُ بِالْعَرَٓاءِ وَهُوَ سَقِيمٌۚ ﴿١٤٥﴾
وَاَنْبَتْنَا عَلَيْهِ شَجَرَةً مِنْ يَقْطِينٍۚ ﴿١٤٦﴾ وَاَرْسَلْنَاهُ اِلٰى مِائَةِ اَلْفٍ
اَوْ يَزِيدُونَۚ ﴿١٤٧﴾ فَاٰمَنُوا فَمَتَّعْنَاهُمْ اِلٰى حِينٍۜ ﴿١٤٨﴾ فَاسْتَفْتِهِمْ
اَلِرَبِّكَ الْبَنَاتُ وَلَهُمُ الْبَنُونَۙ ﴿١٤٩﴾ اَمْ خَلَقْنَا الْمَلٰٓئِكَةَ اِنَاثًا
وَهُمْ شَاهِدُونَ ﴿١٥٠﴾ اَلَٓا اِنَّهُمْ مِنْ اِفْكِهِمْ لَيَقُولُونَۙ ﴿١٥١﴾ وَلَدَ
اللّٰهُۙ وَاِنَّهُمْ لَكَاذِبُونَ ﴿١٥٢﴾ اَصْطَفَى الْبَنَاتِ عَلَى الْبَنِينَۜ ﴿١٥٣﴾

**127.** Wan ew derewandin. Bêguman ew, wê (ji bo ezabê) bêne amadekirin.
**128.** Evdên Allah yên ku muxlas/dilpak/xwedî îxlâs in, ne tê de.
**129.** Me navê wî di navbera wan ên pey de tên re (ji bo ku wî bixêr bi bîr bînin me dengekî xweşik) danî/berda.
**130.** Silav li ser Îlyas be.
**131.** Bêguman em, muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin ha wiha xelat dikin.
**132.** Muheqeq ew, ji evdên me yên mûmîn bû.
**133.** Muheqeq Lût jî ji pêxemberên mursel e/şandî ye.
**134.** Wê demê me Lût û malbata wî bi tevahî xelas kiribû.
**135.** Lê di nav wan ên paşmayî de pîrejinek (jina Lût) ne tê de.
**136.** Paşê me ew ên din serûbinî hev kirin.
**137.** Hûn dema sibehê di ber wan re/bi serdana wan diborin.
**138.** Dema şevê jî. Ma hûn aqil nagirin?
**139.** Muheqeq Yûnus jî ji pêxemberên mursel e/şandî ye.
**140.** Dema ew, revîya û çû keştîya barkirî.
**141.** Ew ên di keştîyê de pişk avêtin û ew bû ji yên ku pişklêketî.
**142.** (Di rewşeke derûnî ya wisan de bû ku) xwe bixwe dilomand û masî ew daqurtandibû.
**143.** Eger ew ne ji wan ên ku tesbîh dikin bûya,
**144.** Hetanî roja ji nû ve bê vejandin wê di zikê masî de bimana.




**145.** Ew di rewşa nexweşhalîyê de bû, me ew avêt beravê/bejahîyê.
**146.** Me li ser wî (pelfireh û bi sî û bi star, cureyeke ji kundirê) dara "yeqtîn" hêşîn kir.
**147.** Me ew, ji qewmekî sed hezarî re an jî hêj zêdetir re şand.
**148.** Wan îman anîn. Me jî heta demeke diyarkirî wan sûdmend kir.
**149.** Aniha ji wan bipirse: Erê ma zarokên qîz/keç ên Rabbê te ne û kur jî yên wan in?
**150.** Nexwe dema ku me melaîketan wek qîz xuliqandin wan şahidî lê kirine?
**151.** Baldar bin/Dîqat bikin! Ew bi bêbextîyên ku lihev anîne wiha dibêjin:
**152.** "Allah welidandîye." Bêguman ew, derewkar bixwe ne.
**153.** Qey Allah, zarokên qîz li ser zarokên kur bijartîye (serdest girtîye)?

مَا لَكُمْ كَيْفَ تَحْكُمُونَ ﴿١٥٤﴾ اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ﴿١٥٥﴾ اَمْ لَكُمْ سُلْطَانٌ مُبِينٌ ﴿١٥٦﴾
فَأْتُوا بِكِتَابِكُمْ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿١٥٧﴾ وَجَعَلُوا بَيْنَهُ وَبَيْنَ الْجِنَّةِ نَسَبًا
وَلَقَدْ عَلِمَتِ الْجِنَّةُ اِنَّهُمْ لَمُحْضَرُونَ ﴿١٥٨﴾ سُبْحَانَ اللّٰهِ عَمَّا يَصِفُونَ ﴿١٥٩﴾
اِلَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَصِينَ ﴿١٦٠﴾ فَاِنَّكُمْ وَمَا تَعْبُدُونَ ﴿١٦١﴾ مَٓا اَنْتُمْ عَلَيْهِ بِفَاتِنِينَ ﴿١٦٢﴾
اِلَّا مَنْ هُوَ صَالِ الْجَحِيمِ ﴿١٦٣﴾ وَمَا مِنَّٓا اِلَّا لَهُ مَقَامٌ مَعْلُومٌ ﴿١٦٤﴾ وَاِنَّا لَنَحْنُ
الصَّٓافُّونَ ﴿١٦٥﴾ وَاِنَّا لَنَحْنُ الْمُسَبِّحُونَ ﴿١٦٦﴾ وَاِنْ كَانُوا لَيَقُولُونَ ﴿١٦٧﴾ لَوْ اَنَّ
عِنْدَنَا ذِكْرًا مِنَ الْاَوَّلِينَ ﴿١٦٨﴾ لَكُنَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَصِينَ ﴿١٦٩﴾ فَكَفَرُوا بِهِ
فَسَوْفَ يَعْلَمُونَ ﴿١٧٠﴾ وَلَقَدْ سَبَقَتْ كَلِمَتُنَا لِعِبَادِنَا الْمُرْسَلِينَ ﴿١٧١﴾ اِنَّهُمْ
لَهُمُ الْمَنْصُورُونَ ﴿١٧٢﴾ وَاِنَّ جُنْدَنَا لَهُمُ الْغَالِبُونَ ﴿١٧٣﴾ فَتَوَلَّ عَنْهُمْ حَتّٰى
حِينٍ ﴿١٧٤﴾ وَاَبْصِرْهُمْ فَسَوْفَ يُبْصِرُونَ ﴿١٧٥﴾ اَفَبِعَذَابِنَا يَسْتَعْجِلُونَ ﴿١٧٦﴾
فَاِذَا نَزَلَ بِسَاحَتِهِمْ فَسَٓاءَ صَبَاحُ الْمُنْذَرِينَ ﴿١٧٧﴾ وَتَوَلَّ عَنْهُمْ حَتّٰى
حِينٍ ﴿١٧٨﴾ وَاَبْصِرْ فَسَوْفَ يُبْصِرُونَ ﴿١٧٩﴾ سُبْحَانَ رَبِّكَ رَبِّ الْعِزَّةِ
عَمَّا يَصِفُونَ ﴿١٨٠﴾ وَسَلَامٌ عَلَى الْمُرْسَلِينَ ﴿١٨١﴾ وَالْحَمْدُ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿١٨٢﴾

## سُورَةُ صٓ

مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانٍ وَثَمَانُونَ اٰيَةً

**154.** Çi dibe ji we, hûn çawa hukim didin.

**155.** Ma hûn şîret nagirin?

**156.** An na (li ser rastîya van gotinên we) delîleke we ya eşkere heye?

**157.** Eger hûn rast dibêjin Kitêba xwe bînin (em binêrin)!

**158.** Wan di navbera wî û cinan de pêwendîya nesebê danîne. Sond be, cin jî dizanin ku ew (ji bo hisabê) wê bên amadekirin.

**159.** Allah, ji ya ku ew wî pê diwesifînin munezzeh e/pak e.

**160.** Evdên Allah yên ku muxlas/dilpak/xwedî îxlâs in, ne tê de. (Ew, wesfên wisan li Allah nakin. Wî, ji hemû kêmasîyan munezzeh dikin.)

**161.** Bêşik hûn û ew ên ku hûn îbadetê wan dikin...

**162.** Hûn nikarin tu kesî (li ser dînê xwe) ji rê bikin/têxin fitnê.

**163.** Ew ên ku wê bikevin agir ne tê de. (Hûn enceq bikaribin yên wisan têxin fitnê.)

**164.** (Melaîket dibêjin:) “Teqez ji bo her yekî ji me meqamekî malum/diyar heye.”

**165.** “Bêguman em, her ew in ku rêz bi rêz sef digirin.”

**166.** “Û dîsa, bêşik em her ew in ku tesbîh dikin.”

**167.** (Muşrîkan) wiha digotin:

**168.** “Eger ji kitêbên pêşîyan li cem me hebûya,”

**169.** “Bêguman em ê bibûna ji evdên Allah yên ku muxlas/dilpak/xwedî îxlâs in.”

**170.** (Dema ji wan re Kitêb jî hat) înkar kirin. Wê di pir nêz de bibînin/fêm bikin.

**171.** Sond be, ji bo evdên me yên pêxember re (ev) soza me borîye:

**172.** Bêguman ew, (teqez ew bixwe) wê alîkarî li wan bê kirin.

**173.** Û leşkerên me teqez wê xalib/serkeftî bin.

**174.** Heta demekê tu berê xwe ji wan vegerîne.

**175.** Çavnêrîya wan bike! Wê di nêz de (ew ê jî) bibînin.

**176.** Erê ma ew (ji bo hatina) ezaba me dilezînin?

**177.** Dema ku (ezab) dadikeve qada jiyana wan, sibeha wan ên ku hatine hişyarkirin, çiqas xerab dibe.

**178.** Heta demekê tu berê xwe ji wan vegerîne.

**179.** Çavnêrîya wan bike! Wê di nêz de (ew ê jî) bibînin.

**180.** Ew Rabbê te yê ku xwedî îzzet e, ji ya ku ew wî pê diwesifînin munezzeh e/pak e.

**181.** Silav li ser wan (pêxember) ên mursel/şandî ne.

**182.** Hamd ji Allahê Rabbê aleman re ye.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
صٓ وَالْقُرْاٰنِ ذِي الذِّكْرِۜ ﴿١﴾ بَلِ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا ف۪ي عِزَّةٍ وَشِقَاقٍ ﴿٢﴾
كَمْ اَهْلَكْنَا مِنْ قَبْلِهِمْ مِنْ قَرْنٍ فَنَادَوْا وَلَاتَ ح۪ينَ مَنَاصٍ ﴿٣﴾
وَعَجِبُٓوا اَنْ جَٓاءَهُمْ مُنْذِرٌ مِنْهُمْۘ وَقَالَ الْكَافِرُونَ هٰذَا سَاحِرٌ
كَذَّابٌۚ ﴿٤﴾ اَجَعَلَ الْاٰلِهَةَ اِلٰهًا وَاحِدًاۚ اِنَّ هٰذَا لَشَيْءٌ عُجَابٌ ﴿٥﴾
وَانْطَلَقَ الْمَلَاُ مِنْهُمْ اَنِ امْشُوا وَاصْبِرُوا عَلٰٓى اٰلِهَتِكُمْۚ
اِنَّ هٰذَا لَشَيْءٌ يُرَادُۚ ﴿٦﴾ مَا سَمِعْنَا بِهٰذَا فِي الْمِلَّةِ الْاٰخِرَةِۚ اِنْ هٰذَٓا
اِلَّا اخْتِلَاقٌۚ ﴿٧﴾ ءَاُنْزِلَ عَلَيْهِ الذِّكْرُ مِنْ بَيْنِنَاۜ بَلْ هُمْ ف۪ي شَكٍّ
مِنْ ذِكْر۪يۚ بَلْ لَمَّا يَذُوقُوا عَذَابِۜ ﴿٨﴾ اَمْ عِنْدَهُمْ خَزَٓائِنُ رَحْمَةِ رَبِّكَ
الْعَز۪يزِ الْوَهَّابِۚ ﴿٩﴾ اَمْ لَهُمْ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا
فَلْيَرْتَقُوا فِي الْاَسْبَابِ ﴿١٠﴾ جُنْدٌ مَا هُنَالِكَ مَهْزُومٌ مِنَ الْاَحْزَابِ ﴿١١﴾
كَذَّبَتْ قَبْلَهُمْ قَوْمُ نُوحٍ وَعَادٌ وَفِرْعَوْنُ ذُو الْاَوْتَادِۙ ﴿١٢﴾ وَثَمُودُ وَقَوْمُ
لُوطٍ وَاَصْحَابُ لْـَٔيْكَةِۜ اُو۬لٰٓئِكَ الْاَحْزَابُ ﴿١٣﴾ اِنْ كُلٌّ اِلَّا كَذَّبَ
الرُّسُلَ فَحَقَّ عِقَابِ ﴿١٤﴾ وَمَا يَنْظُرُ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ اِلَّا صَيْحَةً وَاحِدَةً مَا لَهَا
مِنْ فَوَاقٍ ﴿١٥﴾ وَقَالُوا رَبَّنَا عَجِّلْ لَنَا قِطَّنَا قَبْلَ يَوْمِ الْحِسَابِ ﴿١٦﴾

## 38. SÛREYA SÂD

*(Sûreya Sâd, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heştê û heşt (88) ayet e. )*

*Di Qur'anê de sûreya sî û heştemîn e. Sûre, di ayeta yekemîn de bi herfê "Sâd" dest pê dike ku ev herf ji hurûfên muqattaa tê hesibandin. Ji ber vê yekê sûre bi navê sûreya Sâd hatîye binav kirin. Sûre, di tewereya/di mîhwera qaîdeyên tewhîd û nubûwet û axîret de mijarên vexwendina hîdayetê bi dest dixe ku her sê qaîde jî esasên bingehîn ya îslamê teşkil dikin. Di sûreyê de rewşa kesên dijberîya heqê dikin û bersivdayina îdîayên wan û qiseyên der heqê têkoşîna heq û batil de û hin teswîrên axîretê yên hişyarker û serkeftina îslamê ya di pêşerojê de jî tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sâd. Bi vê Qur'ana rûmetdar/tije şîret sond be.
**2.** (Nexêr!) Berevajî, ew ên ku kafir bûne di nav qüretî û veqetîneke/dijberîyeke (bêmane) de ne.
**3.** Me di berîya wan de gelek neslan helak kirine. Ew ji bo ku (xelas bibin) qîrîn dabûn/hawar kiribûn. (Lê) ne dema xelasîyê bû/kar ji kar borîbû.
**4.** Ji ber ku hişyarkerek ji nav wan derketîye şaş bûn û kafiran wiha gotin: "Bêguman ev, sêhrbazekî derewkar e!"
**5.** "Erê ma wî hemû îlâhan kir yek îlâh? Bi rastî ev tiştekî pir balkêş e/lê şaşmayî ye."
**6.** Giregiran tevgerîyan (û gotin): "Bimeşin û di perestîya îlâhên xwe de bi semax bin (di girêdayîtîya wan de li ber xwe bidin). Bêşik ev a ku (ji we) tê xwestin ev e.
**7.** "Me ev, di dîneke din de nebihîstîye. Ew (tewhîd), bitenê lihevanînek e."
**8.** "Erê ma Quran, ji nav me hemûyan jê re nazil bû?" (Nexêr, ne wisan e!) Bi rastî ew der heqê Qur'ana min de di gumanê de ne. Ya rasttir jî ev e ku, wan hêj ezaba min tam nekirine.
**9.** Ma qey xezîneyên rahmeta Rabbê te yê (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (ew ê bê gerew/bê berdêl dide evdên xwe) Wehhab, li cem wan e?
**10.** Ma qey hakimîyeta/serwerîya erd û esmanan û tiştên di navbera herduyan de aîdê wan e? (Madem wisan e! Bila rêyekî bibînin û) bi esmanan ve bilind bibin.
**11.** (Ewana) li wê derê, ordîyeke/artêşeke ji qewmên têkçûyî/mexlûb in.
(Ayet, agahîyê dide ku; çawa ew qewmên borî têşikandî bûbin wê ew muşrîk bixwe jî bên têşikandin.)
**12.** Berîya wan qewmê Nûh û qewmê Ad û Firewn yê ku xwedîyê singan/sekeyan (ordîyên mezin) jî derewandin.
**13.** Qewmê Semûd û qewmê Lût û xelkê Eykê jî (derewandin). Evana komên (helakbûyî ne).
**14.** Teqez tevekê wan pêxemberên xwe derewandin, heta ku ezabê min (li ser wan) heq bû.
**15.** Ya ku evana li hêvîya wê ne bitenê qîrînek e. Ew, lehzeyek/kêlîyek jî dereng namîne.
**16.** Gotin: "Rabbê Me! Berîya roja hisabê, para me ya ji ezabê zû bide me."

اِصْبِرْ عَلٰى مَا يَقُولُونَ وَاذْكُرْ عَبْدَنَا دَاوُ۫دَ ذَا الْاَيْدِۚ اِنَّهُٓ اَوَّابٌ ﴿١٧﴾
اِنَّا سَخَّرْنَا الْجِبَالَ مَعَهُ يُسَبِّحْنَ بِالْعَشِيِّ وَالْاِشْرَاقِۙ ﴿١٨﴾ وَالطَّيْرَ
مَحْشُورَةًۜ كُلٌّ لَهُٓ اَوَّابٌ ﴿١٩﴾ وَشَدَدْنَا مُلْكَهُ وَاٰتَيْنَاهُ الْحِكْمَةَ وَفَصْلَ
الْخِطَابِ ﴿٢٠﴾ وَهَلْ اَتٰيكَ نَبَؤُا الْخَصْمِۢ اِذْ تَسَوَّرُوا الْمِحْرَابَۙ ﴿٢١﴾
اِذْ دَخَلُوا عَلٰى دَاوُ۫دَ فَفَزِعَ مِنْهُمْ قَالُوا لَا تَخَفْۚ خَصْمَانِ بَغٰى
بَعْضُنَا عَلٰى بَعْضٍ فَاحْكُمْ بَيْنَنَا بِالْحَقِّ وَلَا تُشْطِطْ وَاهْدِنَٓا
اِلٰى سَوَٓاءِ الصِّرَاطِ ﴿٢٢﴾ اِنَّ هٰذَٓا اَخ۪ي لَهُ تِسْعٌ وَتِسْعُونَ نَعْجَةً وَلِيَ
نَعْجَةٌ وَاحِدَةٌ فَقَالَ اَكْفِلْنِيهَا وَعَزَّنِي فِي الْخِطَابِ ﴿٢٣﴾ قَالَ لَقَدْ
ظَلَمَكَ بِسُؤَالِ نَعْجَتِكَ اِلٰى نِعَاجِه۪ۜ وَاِنَّ كَث۪يرًا مِنَ الْخُلَطَٓاءِ
لَيَبْغ۪ي بَعْضُهُمْ عَلٰى بَعْضٍ اِلَّا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
وَقَل۪يلٌ مَا هُمْۜ وَظَنَّ دَاوُ۫دُ اَنَّمَا فَتَنَّاهُ فَاسْتَغْفَرَ رَبَّهُ وَخَرَّ رَاكِعًا
وَاَنَابَ ﴿٢٤﴾ فَغَفَرْنَا لَهُ ذٰلِكَۜ وَاِنَّ لَهُ عِنْدَنَا لَزُلْفٰى وَحُسْنَ مَاٰبٍ ﴿٢٥﴾
يَا دَاوُ۫دُ اِنَّا جَعَلْنَاكَ خَل۪يفَةً فِي الْاَرْضِ فَاحْكُمْ بَيْنَ النَّاسِ
بِالْحَقِّ وَلَا تَتَّبِعِ الْهَوٰى فَيُضِلَّكَ عَنْ سَب۪يلِ اللّٰهِۜ اِنَّ الَّذ۪ينَ يَضِلُّونَ
عَنْ سَب۪يلِ اللّٰهِ لَهُمْ عَذَابٌ شَد۪يدٌ بِمَا نَسُوا يَوْمَ الْحِسَابِ ﴿٢٦﴾

**17.** Tu li hemberî gotinên wan sebir bike û evdê me Dawûd bi bîr bîne ku ew xwedî hêz bû. Bêşik berê wî her bi bal (Allah) ve bû.

**18.** Me çiyan dan bin emrê wî, hemûyan sibeh û êvarê ligel wî tesbih dikirin.




**19.** Û me hemû teyrên ku ref bi ref dicivîyan jî (dabûn bin emrê wî). Hemûyan ligel wî (tesbîh dikirin û) berê xwe didan (Allah).

**20.** Me hikumranîya wî xurt kir. Me hikmet û taybetîya qerardayîna biîsabet/axaftineke bandorker dabûyê.

**21.** Ma ew agahîya dawedaran (berberan/reqîban) gihîşte te? Dema xwe ji ser dîwara bilind ve avêtin (û ketibûn cem Dawûd).

**22.** Dema ketin cem Dawûd, ji wan tirsîya. Gotin: "Netirse! Em du dawedar in ku yekî ji me neheqî li yê din kiriye. Tu di navbera me de bi edaletî hukim bike, zilmê neke. Me bigihîne ser rêya rasterast."

**23.** "Ev birayê min e. Not û neh mêşinên/pezên wî hene û yek mêşineke/pezeke min heye. (Ji min re) dibêje: "Wê jî bide min." Di nîqaşê de jî bi ser min ket."

**24.** Got: "Sond be bi xwestina tevlêkirina mêşina te ya bi ser yên xwe ve zilim li te kiriye. Bi rastî; ekserîyetê şirîkan dikevin heqê hevdu. Ew ên îman anîne û amelên salih dikin ne tê de. Ew jî çiqas kêm in!" Dawûd zen kir ku em wî îmtîhan dikin. Ji Rabbê xwe mexfîret xwest û çû rukûyê û berê xwe da (Allah).

(Li ser vegotinên Allah (ac) ya der heqê piranî û kêmanîyê de bnr. 11/Hûd, 40)

**25.** Me vê, jê re bexişand. Bêguman li cem me nêzbûna wî û cihlêvegerekî wî yê xweşik heye.

**26.** Ya Dawûd! Me tu li ser rûyê erdê kir xelîfe. (Nexwe) di nav însanan de bi heq hukim bike. Nebe tabiê hewayê/hewesê, nexwe wê te ji rêya Allah bixerifîne. Bêguman, ji wan ên ku ji rêya Allah xerifîne re, ji ber ku roja hisabê ji bîr kirine ezabekî dijwar heye.

وَمَا خَلَقْنَا السَّمَٓاءَ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا بَاطِلًاۜ ذٰلِكَ ظَنُّ الَّذٖينَ
كَفَرُواۚ فَوَيْلٌ لِلَّذٖينَ كَفَرُوا مِنَ النَّارِۜ ﴿٢٧﴾ اَمْ نَجْعَلُ الَّذٖينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ كَالْمُفْسِدٖينَ فِي الْاَرْضِۘ اَمْ نَجْعَلُ الْمُتَّقٖينَ
كَالْفُجَّارِ ﴿٢٨﴾ كِتَابٌ اَنْزَلْنَاهُ اِلَيْكَ مُبَارَكٌ لِيَدَّبَّرُٓوا اٰيَاتِهٖ وَلِيَتَذَكَّرَ
اُو۬لُوا الْاَلْبَابِ ﴿٢٩﴾ وَوَهَبْنَا لِدَاو۫دَ سُلَيْمٰنَۜ نِعْمَ الْعَبْدُۜ اِنَّهُٓ اَوَّابٌۜ ﴿٣٠﴾
اِذْ عُرِضَ عَلَيْهِ بِالْعَشِيِّ الصَّافِنَاتُ الْجِيَادُۙ ﴿٣١﴾ فَقَالَ اِنّٖٓي اَحْبَبْتُ
حُبَّ الْخَيْرِ عَنْ ذِكْرِ رَبّٖيۚ حَتّٰى تَوَارَتْ بِالْحِجَابِۗ ﴿٣٢﴾ رُدُّوهَا عَلَيَّۜ
فَطَفِقَ مَسْحًا بِالسُّوقِ وَالْاَعْنَاقِ ﴿٣٣﴾ وَلَقَدْ فَتَنَّا سُلَيْمٰنَ وَاَلْقَيْنَا
عَلٰى كُرْسِيِّهٖ جَسَدًا ثُمَّ اَنَابَ ﴿٣٤﴾ قَالَ رَبِّ اغْفِرْ لٖي وَهَبْ لٖي مُلْكًا
لَا يَنْبَغٖي لِاَحَدٍ مِنْ بَعْدٖيۚ اِنَّكَ اَنْتَ الْوَهَّابُ ﴿٣٥﴾ فَسَخَّرْنَا لَهُ
الرّٖيحَ تَجْرٖي بِاَمْرِهٖ رُخَٓاءً حَيْثُ اَصَابَۙ ﴿٣٦﴾ وَالشَّيَاطٖينَ كُلَّ بَنَّٓاءٍ
وَغَوَّاصٍۙ ﴿٣٧﴾ وَاٰخَرٖينَ مُقَرَّنٖينَ فِي الْاَصْفَادِ ﴿٣٨﴾ هٰذَا عَطَٓاؤُ۬نَا فَامْنُنْ
اَوْ اَمْسِكْ بِغَيْرِ حِسَابٍ ﴿٣٩﴾ وَاِنَّ لَهُ عِنْدَنَا لَزُلْفٰى وَحُسْنَ مَاٰبٍۜ ﴿٤٠﴾
وَاذْكُرْ عَبْدَنَٓا اَيُّوبَۢ اِذْ نَادٰى رَبَّهُٓ اَنّٖي مَسَّنِيَ الشَّيْطَانُ بِنُصْبٍ
وَعَذَابٍۜ ﴿٤١﴾ اُرْكُضْ بِرِجْلِكَۚ هٰذَا مُغْتَسَلٌ بَارِدٌ وَشَرَابٌ ﴿٤٢﴾

**27.** Me erd asîman û yên di navbera herduyan de betal/hema wisan/bê meqset ne xuliqandîye. Ev zena kafiran e. Ji ber (ku wê bikevin) agir weyl li halê kafiran!

(Ev ayet, piştî ku Dawûd (as) bi emrê hukimkirina li ser heq û netabîbûna hewayê tê emirkirin nazil bûye. Ev ayet mane û hinareyeke pir kûr dihewîne. Madem xaliqê vê dinyayê Allah e (ac), herwiha li ser vê dinyayê ya xwedî gotin û raye jî divê ku ew be. Ew ên ku bi wê "heq" a ku Allah (ac) daxistîye hukim nakin; ew kes in ku li cem xwe wiha zen dikin 'ev dinya betal û hema wisan û bê meqset hatîye xuliqandin.' Hal ev e ku Allah (ac) dinya û tiştên di navê de; ne ji bo tiştekî din, bitenê ji bo ku jê re îbadet bê kirin xuliqandîye (51/Zârîyat, 56) û ji bo hukimkirina pê Kitêb nazil kiriye (38/Sâd, 26) û ji bo ku heq batil parçe û tune bike (21/Enbîyâ, 16-18) û bi şiûra axîretê tirs û parastina ji Allah (23/Mu'mînûn, 115-116) ... Ha weke van ji bo meqsedên berzî/payebilind xuliqandîye.)

**28.** Ew ên îman anîne û amelên salih kirine û ew kesên ku li ser rûyê erdê fesadîyê dikin, ma qey em wan wekhev digirin? An jî em Mutteqîyan bi faciran re dikin wekhev?

**29.** Ev (Qur'an) Kitêbeke pîroz e, me ji te re daxistîye da ku li ser ayetên wê bifikirin û yên aqilmend jê şîret bigirin. (Ji bo meqseda nazil kirina Kitêbê bnr. 4/Nîsa, 105)

**30.** Me Suleyman ji Dawûd re îhsan kir. Çi evdekî xweşik e ew. Lewre ew, berê xwe pir dida (Allah).

**31.** Dema ber êvarê jê re hespên kihêl hatibûn teqdîmkirin.

**32.** Gotibû: "Hezkirina min a xêrê (hespan), min ji zikra Rabbê xwe ragirt." Axir ew ragire jî di paş perdê de veşartî ma. (Roj çû ava û wextê îbadetê derket.)

**33.** "Wan ji min re vegerînin." (Paşê) dest bi mizdana pî/çîp û stûyên wan kir. (Ji ber ku wî ji zikra Allah radigirtin, wî jî wan serjêkir û ji jiyana xwe derxistin.)

**34.** Sond be, me Suleyman îmtîhan kiribû û me li ser textê wî termek/cesedek (bêlebat) danî bû. Piştre wî, berê xwe dabû (Allah).

**35.** Gotibûn: "Rabbê min! Min mexfîret bike û hukimdarîyeke wisan bide min ku piştî min tu kes negihîje wê. Bêguman tu, (ew ê ku bê gerew/bê dêl dide evdên xwe) Wehhab î."

**36.** Me bayê xist bin emrê wî. Bi kîjan alî ve bixwesta ew bi wê alî ve dikişîya û diçû.

**37.** Û hemû şeytanên noqavîyê dikin û hostayên avahîyan in jî (me xist bin emrê wî.)

**38.** (Hinek şeytan) ên din ku li qeydan xistî ne jî (me xist bin emrê wî).

**39.** (Me got:) "Ha ev, dayîna me ya (ji te re) ye. Êdî li gor daxwaza xwe ji kî re dixwazî bêhisab bidê û nexwazî jî nede."

**40.** Bêguman li cem me nêzbûna wî û cihlêvegerekî wî yê xweşik heye.

**41.** Evdê me Eyyûb jî bi bîr bîne! Dema wî gazî Rabbê xwe kir (û got:) "Bêguman şeytan ezab û bi betilandin gihandîye min."

**42.** "Lingê xwe li erdê bixwe. Ev, aveke sar e û ji bo vexwarin û şûştinê ye."

وَوَهَبْنَا لَهُٓ اَهْلَهُ وَمِثْلَهُمْ مَعَهُمْ رَحْمَةً مِنَّا وَذِكْرٰى لِاُو۬لِي
الْاَلْبَابِ ﴿٤٣﴾ وَخُذْ بِيَدِكَ ضِغْثًا فَاضْرِبْ بِهٖ وَلَا تَحْنَثْۜ اِنَّا وَجَدْنَاهُ
صَابِرًاۜ نِعْمَ الْعَبْدُۜ اِنَّهُٓ اَوَّابٌ ﴿٤٤﴾ وَاذْكُرْ عِبَادَنَٓا اِبْرٰهٖيمَ وَاِسْحٰقَ
وَيَعْقُوبَ اُو۬لِي الْاَيْدٖي وَالْاَبْصَارِ ﴿٤٥﴾ اِنَّٓا اَخْلَصْنَاهُمْ بِخَالِصَةٍ
ذِكْرَى الدَّارِۚ ﴿٤٦﴾ وَاِنَّهُمْ عِنْدَنَا لَمِنَ الْمُصْطَفَيْنَ الْاَخْيَارِ ﴿٤٧﴾
وَاذْكُرْ اِسْمٰعٖيلَ وَالْيَسَعَ وَذَا الْكِفْلِۜ وَكُلٌّ مِنَ الْاَخْيَارِۜ ﴿٤٨﴾
هٰذَا ذِكْرٌۜ وَاِنَّ لِلْمُتَّقٖينَ لَحُسْنَ مَاٰبٍۙ ﴿٤٩﴾ جَنَّاتِ عَدْنٍ مُفَتَّحَةً
لَهُمُ الْاَبْوَابُۚ ﴿٥٠﴾ مُتَّكِـٖٔينَ فٖيهَا يَدْعُونَ فٖيهَا بِفَاكِهَةٍ كَثٖيرَةٍ
وَشَرَابٍ ﴿٥١﴾ وَعِنْدَهُمْ قَاصِرَاتُ الطَّرْفِ اَتْرَابٌ ﴿٥٢﴾ هٰذَا مَا تُوعَدُونَ
لِيَوْمِ الْحِسَابِ ﴿٥٣﴾ اِنَّ هٰذَا لَرِزْقُنَا مَا لَهُ مِنْ نَفَادٍۚ ﴿٥٤﴾ هٰذَاۜ وَاِنَّ
لِلطَّاغٖينَ لَشَرَّ مَاٰبٍۙ ﴿٥٥﴾ جَهَنَّمَۚ يَصْلَوْنَهَاۚ فَبِئْسَ الْمِهَادُ ﴿٥٦﴾ هٰذَاۙ
فَلْيَذُوقُوهُ حَمٖيمٌ وَغَسَّاقٌۙ ﴿٥٧﴾ وَاٰخَرُ مِنْ شَكْلِهٖٓ اَزْوَاجٌۜ ﴿٥٨﴾ هٰذَا
فَوْجٌ مُقْتَحِمٌ مَعَكُمْۚ لَا مَرْحَبًا بِهِمْۜ اِنَّهُمْ صَالُوا النَّارِ ﴿٥٩﴾ قَالُوا
بَلْ اَنْتُمْ لَا مَرْحَبًا بِكُمْۜ اَنْتُمْ قَدَّمْتُمُوهُ لَنَاۚ فَبِئْسَ الْقَرَارُ ﴿٦٠﴾
قَالُوا رَبَّنَا مَنْ قَدَّمَ لَنَا هٰذَا فَزِدْهُ عَذَابًا ضِعْفًا فِي النَّارِ ﴿٦١﴾

**43.** Me rahmeteke ji cem xwe û ji bo ku ji aqilmendan re bibe şîret/bibîrxistin me malbata wî û misleke din da wî.

**44.** “Baqek/qevdek qirş bi destê xwe bigire û pê lê de. Sonda xwe xera neke. “Bi rastî me ew evdekî sebirvan dît. Çi evdekî xweşik e ew. Lewre wî, berê xwe pir dida (Allah).



**45.** Îbrahîm û Îshaq û Yaqûb jî bi bîr bîne ku ew; ji evdên me yên bi hêz û bi besîret bûn.

**46.** Bêşik me ew kiribûn evdên ku bitenê warê axîretê bi bîr tînin û bi îxlâs in.

**47.** Û bêguman ew li cem me ji yên bixêr ên hilbijartî ne.

**48.** Îsmaîl û Elyese û Zelkifl jî bi bîr bîne! Hemû jî ji yên bixêr/bijare bûn.

**49.** Ev (ji bo wan) bîranînek/rûmetek e. Bêguman ji bo Mutteqîyan jî cihlêvegerekî xweşik heye.

**50.** Cennetên Adn... Derî ji wan re li ser piştê vekirî ne.

**51.** Ew tê de (li ser textan) paldayî ne û pirzêde fêkî û vexwarin dixwazin.

**52.** Li cem wan, jinên hevsal (ku hemû jî canê ciwan û) çavên wan bitenê li ser (mêrê) wan in hene.

**53.** Ev, ji bo roja hisabê ya ku ji we re weadkirî ye.

**54.** Bêguman ev, rizqê me ye ku tu carî naqede.

**55.** Ha wisan... Bêguman ji bo ew ên ku ji hedê xwe borîne re cihlêvegerekî herî xerab heye.

**56.** Wê bikevin cehennemê... Çi ciheke/nivîneke xerab e ew.

**57.** Ev, ava kelandî û edab e. Bila wê bitamînin (em binêrin).

**58.** Û ji xeynî vê, ezabên cûrbicûr heye.

**59.** (Dema her koma nû tên, melâîket ji ehlê cehennemê re dibêjin:) “Ha ev jî komek in ku wê ligel we noqî cehennemê bibin. Ji wan re ‘merheba’ tune. Lewre ew ê têkevin nava agir.”

**60.** (Ew ên peyrew/dûvketî ji serokan re dibêjin:) “(Nexêr!) Esil ji we re ne ‘merheba’/hûn xweşîyê nebînin. We ev (cehennem) anî pêşîya me. Çi cihwareke xerab e.”

**61.** Dibêjin: “Rabbê me! Kî vê (aqubeta cehennemê) anîbe pêşîya me, tu ezabê wî di agir de qat bi qat zêde bike.”

وَقَالُوا مَا لَنَا لَا نَرٰى رِجَالًا كُنَّا نَعُدُّهُمْ مِنَ الْاَشْرَارِ ﴿٦٢﴾ اَتَّخَذْنَاهُمْ
سِخْرِيًّا اَمْ زَاغَتْ عَنْهُمُ الْاَبْصَارُ ﴿٦٣﴾ اِنَّ ذٰلِكَ لَحَقٌّ تَخَاصُمُ اَهْلِ
النَّارِ ﴿٦٤﴾ قُلْ اِنَّمَا اَنَا مُنْذِرٌ وَمَا مِنْ اِلٰهٍ اِلَّا اللّٰهُ الْوَاحِدُ الْقَهَّارُ ﴿٦٥﴾
رَبُّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا الْعَزِيزُ الْغَفَّارُ ﴿٦٦﴾ قُلْ هُوَ
نَبَؤٌا عَظِيمٌ ﴿٦٧﴾ اَنْتُمْ عَنْهُ مُعْرِضُونَ ﴿٦٨﴾ مَا كَانَ لِيَ مِنْ عِلْمٍ بِالْمَلَاِ
الْاَعْلٰى اِذْ يَخْتَصِمُونَ ﴿٦٩﴾ اِنْ يُوحٰى اِلَيَّ اِلَّا اَنَّمَا اَنَا نَذِيرٌ مُبِينٌ ﴿٧٠﴾
اِذْ قَالَ رَبُّكَ لِلْمَلٰٓئِكَةِ اِنِّي خَالِقٌ بَشَرًا مِنْ طِينٍ ﴿٧١﴾ فَاِذَا سَوَّيْتُهُ
وَنَفَخْتُ فِيهِ مِنْ رُوحِي فَقَعُوا لَهُ سَاجِدِينَ ﴿٧٢﴾ فَسَجَدَ الْمَلٰٓئِكَةُ
كُلُّهُمْ اَجْمَعُونَ ﴿٧٣﴾ اِلَّا اِبْلِيسَ اِسْتَكْبَرَ وَكَانَ مِنَ الْكَافِرِينَ ﴿٧٤﴾
قَالَ يَا اِبْلِيسُ مَا مَنَعَكَ اَنْ تَسْجُدَ لِمَا خَلَقْتُ بِيَدَيَّ اَسْتَكْبَرْتَ
اَمْ كُنْتَ مِنَ الْعَالِينَ ﴿٧٥﴾ قَالَ اَنَا خَيْرٌ مِنْهُ خَلَقْتَنِي مِنْ نَارٍ وَخَلَقْتَهُ
مِنْ طِينٍ ﴿٧٦﴾ قَالَ فَاخْرُجْ مِنْهَا فَاِنَّكَ رَجِيمٌ ﴿٧٧﴾ وَاِنَّ عَلَيْكَ
لَعْنَتِي اِلٰى يَوْمِ الدِّينِ ﴿٧٨﴾ قَالَ رَبِّ فَاَنْظِرْنِي اِلٰى يَوْمِ يُبْعَثُونَ ﴿٧٩﴾
قَالَ فَاِنَّكَ مِنَ الْمُنْظَرِينَ ﴿٨٠﴾ اِلٰى يَوْمِ الْوَقْتِ الْمَعْلُومِ ﴿٨١﴾ قَالَ
فَبِعِزَّتِكَ لَاُغْوِيَنَّهُمْ اَجْمَعِينَ ﴿٨٢﴾ اِلَّا عِبَادَكَ مِنْهُمُ الْمُخْلَصِينَ ﴿٨٣﴾

**62.** Û dibêjin: “Çi dibe ji me wiha? Ew ên ku me wan wek şerîr/bêqîmet dipejirandin em wan nabînin. (Ew mûmînên ku me wan biçûk didîtin çima ne li vê derê ne?).

**63.** “Me tinazên xwe bi wan dikir, ne wisan? (Xwelî li serê me be.) Nexwe (qêy ew jî di cehennemê de ne, lê) em nabînin?”

**64.** “Hevrikîya ehlê cehennemê helbet rast e/heq e.”

**65.** Bibêje: “Ez bitenê hişyarkerek im. Ji wî Allahê (di zat û fiêl û sifetên xwe de) Wahîd û (yê ku ji her tiştî re serî daye tewandin û xistîye bin hukmê xwe) Qahhar pê ve qet tu îlâh tune.”

**66.** Rabbê erd û esmanan û yên di navbera wan de ye. Ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (yê ku gunehan pirzêde mexfîret dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xaffar e.

**67.** Bibêje: “Ew, xeberekî mezin e.”

**68.** “Hûn jê rû vedigerînin.”

**69.** “Dema ku ew di navbera xwe de nîqaş dikin, der heqê Mele-î A’lâ/Cîvata Bilind de agahîya min tune.”

**70.** “Ji min re tê wehîykirin ku ez bitenê hişyarkerek im.”

**71.** Bi bîr bîne, dema ku Rabbê te ji melaîketan re wiha gotibû: “Muheqeq ez ê ji herîyê însanekî bixuliqînim.”

**72.** “Dema ku min ew temam kir û ji rûhê xwe pifkirê, hûn ji bo wî herin secdê.”

**73.** Hemû melaîketan secde kirin.

**74.** Îblîs ne tê de... Wî xwe qure kir û bû ji kafiran.

**75.** (Allah) Got: “Ya Îblîs! Ya ku min ew bi destên xwe xuliqandîye re, çi tiştî nehişt ku tu bibî ligel secdebiran? Tu bi quretîyê ketî an jî tu xwe ji mezinan dihesibînî (ku te dest bi kêmdîtinê kiriye)?

**76.** (Îblîs) got: “Ez ji Âdem bixêrtir im. (Lewre) te ez ji agir xuliqandim û Âdem jî ji herîyê xuliqand.”

**77.** (Allah) Got: “Ji wir derkeve! Bêguman tu ji yên hatine qewirandin/recimandin î.”

**78.** “Û bêguman heta yewmud’dîn/roja qiyametê laneta min wê li ser te be.”

**79.** (Îblîs) Got: “Rabbê min! Heta roja ku (însan) ji nû de vedijin muhletê bide min.”

**80.** (Allah) Got: “Bêguman tu ji yên muhletdayîyan î.”

**81.** “Hetanî dema diyarkirî ku roja wê tê zanîn.”

**82.** (Îblîs) Got: “Sond bi îzzeta te, ez ê wan hemûyan bixerifînim.”

**83.** “Lê evdên te yên muxlas/dilpak/xwedî îxlâs ne tê de.”

**84.** Got: "Ya rast (ev e) û ez heqîyê dibêjim."
**85.** "Sond be ez ê cehennemê bi te û ji wan ên ku didin pey te, bi we hemûyan re dagirim."
**86.** Bibêje: "Ez (di muqabilê daweta/teblîxa xwe de) destheqekî ji we naxwazim. Û ez ne ji zorbazan (ew ên tiştan ji serê xwe lihev tînin û îdîaya nûbûwetê dikin) im.
**87.** "Ew, bitenê ji aleman re şîretek e."
**88.** "Ew agahîyên ku daye we, hûn ê piştî demekê hîn bibin (ku rast e)."



## 39. SÛREYA ZÛMER

*(Sûreya Zûmer, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heftê û pênc (75) ayet e.)*
*Di Qur'anê de sûreya sî û nehemîn e. Sûreya Zûmer, navê xwe ji peyva "Zûmer" sitendîye ku ev kelîme di ayetên 71. û 73. de dibore. Sûreya Zûmer de bi gelek ayetan bal tê kişandin ku Qur'an berhema wehîyê ye. Ligel vê aqîdeya tewhîdê tê ranavtin/tê telqîn kirin û bawerîyên şîrkê tê red kirin. Di sûreyê de mijara sewq kirina zûmreya mûmînan bal bi cennetê ve û sewq kirina zûmreya kafiran jî bal bi cehennemê ve tê teswîr kirin. Ligel vê hemû însan berîya ku bimirin bi beralîbûna bal bi Allah (ac) ve tên vexwendin.*
*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** (Ev) Kitêb, ji terefê wî yê (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm ve hatîye daxistin.
**2.** Bêguman me (ev) Kitêb li ser heq ji te re nazil kiriye. (Nexwe) dîn bitenê ji Allah re xalis bike û îbadet bike.
**3.** Baldar bin/Dîqat bikin! Dînê xalis aîdê Allah e. Ew ên ji xeynî wî welîyan/dostan digirin (wiha dibêjin:) "Ji bo ku me nêzî Allah bikin em îbadetê wan dikin." Allah, di mijarên ku tê de ketine îxtîlafê de, wê di navbera wan de hukim bide. Bêguman Allah, kesê derewker û kafir nagihîne hîdayetê.

قَالَ فَالْحَقُّ وَالْحَقَّ اَقُولُۚ ﴿٨٤﴾ لَاَمْلَـَٔنَّ جَهَنَّمَ مِنْكَ وَمِمَّنْ
تَبِعَكَ مِنْهُمْ اَجْمَع۪ينَ ﴿٨٥﴾ قُلْ مَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍ وَمَٓا اَنَا۬
مِنَ الْمُتَكَلِّف۪ينَ ﴿٨٦﴾ اِنْ هُوَ اِلَّا ذِكْرٌ لِلْعَالَم۪ينَ ﴿٨٧﴾ وَلَتَعْلَمُنَّ نَبَاَهُ بَعْدَ ح۪ينٍ ﴿٨٨﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
تَنْز۪يلُ الْكِتَابِ مِنَ اللّٰهِ الْعَز۪يزِ الْحَك۪يمِ ﴿١﴾ اِنَّٓا اَنْزَلْنَٓا
اِلَيْكَ الْكِتَابَ بِالْحَقِّ فَاعْبُدِ اللّٰهَ مُخْلِصًا لَهُ الدّ۪ينَۜ ﴿٢﴾
اَلَا لِلّٰهِ الدّ۪ينُ الْخَالِصُۜ وَالَّذ۪ينَ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِه۪ٓ اَوْلِيَٓاءَۢ مَا نَعْبُدُهُمْ
اِلَّا لِيُقَرِّبُونَٓا اِلَى اللّٰهِ زُلْفٰىۜ اِنَّ اللّٰهَ يَحْكُمُ بَيْنَهُمْ ف۪ي مَا هُمْ ف۪يهِ
يَخْتَلِفُونَۜ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَهْد۪ي مَنْ هُوَ كَاذِبٌ كَفَّارٌ ﴿٣﴾ لَوْ اَرَادَ اللّٰهُ
اَنْ يَتَّخِذَ وَلَدًا لَاصْطَفٰى مِمَّا يَخْلُقُ مَا يَشَٓاءُۙ سُبْحَانَهُۜ هُوَ اللّٰهُ
الْوَاحِدُ الْقَهَّارُ ﴿٤﴾ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ بِالْحَقِّۚ يُكَوِّرُ
الَّيْلَ عَلَى النَّهَارِ وَيُكَوِّرُ النَّهَارَ عَلَى الَّيْلِ وَسَخَّرَ الشَّمْسَ
وَالْقَمَرَۜ كُلٌّ يَجْر۪ي لِاَجَلٍ مُسَمًّىۜ اَلَا هُوَ الْعَز۪يزُ الْغَفَّارُ ﴿٥﴾

(Di bingeha şirkê de tesewira "Allahê dûr" û "Însanê biqisûr" heye. "Em kî ne ku em yekser/rasterast ji Allah (ac) re dûa bikin?", "Gunehên me hingî zehf in em ê çawa bi van devên qirêj lavahî li Allah bikin?" Ev fikrê pûç ji bo wî nêzî Allah bike însan ber bi lêgerana "Welîyekî" araste dike. (Bnr. 2/Baqara, 186; 5/Maîde, 35; 34/Sebe, 22-23; 39/Zûmer, 43; Wekî din bnr. 6/En'am, 14) )

**4.** Eger Allah daxwaz bikira ku ji xwe re zarok bigire, ji mexluqatên xwe kîjan bixwesta wê ji xwe re hilbijartiba. Ew, ji hemû kêmasîyan munezzeh e. Ew, (di zat û fiêl û sifetên xwe de) Wahîd û (yê ku ji her tiştî re serî daye tewandin û xistîye bin hukmê xwe) Qahhar e.
**5.** Wî erd û esman bi heq xuliqand. Şevê li ser rojê dipiçikîne û rojê jî li ser şevê dipiçikîne. Roj/Tav û Hîv ji emrê xwe re stûxwar kiriye. Baldar bin, ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (yê ku gunehan pirzêde mexfîret dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xaffar e.

خَلَقَكُمْ مِنْ نَفْسٍ وَاحِدَةٍ ثُمَّ جَعَلَ مِنْهَا زَوْجَهَا وَاَنْزَلَ لَكُمْ
مِنَ الْاَنْعَامِ ثَمَانِيَةَ اَزْوَاجٍۜ يَخْلُقُكُمْ فٖى بُطُونِ اُمَّهَاتِكُمْ خَلْقًا
مِنْ بَعْدِ خَلْقٍ فٖى ظُلُمَاتٍ ثَلٰثٍۜ ذٰلِكُمُ اللّٰهُ رَبُّكُمْ لَهُ الْمُلْكُۜ
لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۚ فَاَنّٰى تُصْرَفُونَ ﴿٦﴾ اِنْ تَكْفُرُوا فَاِنَّ اللّٰهَ غَنِىٌّ
عَنْكُمْ وَلَا يَرْضٰى لِعِبَادِهِ الْكُفْرَۚ وَاِنْ تَشْكُرُوا يَرْضَهُ لَكُمْۜ
وَلَا تَزِرُ وَازِرَةٌ وِزْرَ اُخْرٰىۜ ثُمَّ اِلٰى رَبِّكُمْ مَرْجِعُكُمْ فَيُنَبِّئُكُمْ
بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَۜ اِنَّهُ عَلٖيمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٧﴾ وَاِذَا مَسَّ
الْاِنْسَانَ ضُرٌّ دَعَا رَبَّهُ مُنٖيبًا اِلَيْهِ ثُمَّ اِذَا خَوَّلَهُ نِعْمَةً مِنْهُ نَسِىَ
مَا كَانَ يَدْعُٓوا اِلَيْهِ مِنْ قَبْلُ وَجَعَلَ لِلّٰهِ اَنْدَادًا لِيُضِلَّ
عَنْ سَبٖيلِهٖۜ قُلْ تَمَتَّعْ بِكُفْرِكَ قَلٖيلًاۗ اِنَّكَ مِنْ اَصْحَابِ النَّارِ ﴿٨﴾
اَمَّنْ هُوَ قَانِتٌ اٰنَٓاءَ الَّيْلِ سَاجِدًا وَقَٓائِمًا يَحْذَرُ الْاٰخِرَةَ وَيَرْجُوا
رَحْمَةَ رَبِّهٖۜ قُلْ هَلْ يَسْتَوِى الَّذٖينَ يَعْلَمُونَ وَالَّذٖينَ لَا يَعْلَمُونَۜ
اِنَّمَا يَتَذَكَّرُ اُو۬لُوا الْاَلْبَابِ ﴿٩﴾ قُلْ يَا عِبَادِ الَّذٖينَ اٰمَنُوا
اتَّقُوا رَبَّكُمْۜ لِلَّذٖينَ اَحْسَنُوا فٖى هٰذِهِ الدُّنْيَا حَسَنَةٌۜ وَاَرْضُ
اللّٰهِ وَاسِعَةٌۜ اِنَّمَا يُوَفَّى الصَّابِرُونَ اَجْرَهُمْ بِغَيْرِ حِسَابٍ ﴿١٠﴾

**6.** (Wî) hûn, ji yek nefsekê xuliqandin û paşê jê jî hevjîna wî heyî kir. Ji bona we, ji heywanan heşt cot daxist/xuliqand. We di zikê dêya we de di nava sê tarîtîyan de û ji (merheleya) xuliqandinekî ber bi (merheleya) xuliqandineke din ve derbas dike û dixuliqîne. Ha ev, Rabbê we Allah e. Hakimîyet/Serwerî bitenê aîdê wî ye. Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh nîne. (Herwiha) çawa dibe ku hûn (ji tewhîdê bi bal şirkê ve) tên vegerandin?

**7.** Eger hûn beralîyê kufrê bibin, bêşik hewcedarîya Allah bi we tune û ew ji bo evdên xwe bi kufrê qayîl nabe. Hûn şikur bikin wê jê (ji şukra we) razî bibe. Qet tu gunehkarek, gunehê kesekî din nakişîne. Paşê vegera we bal bi Rabbê we ve ye. Ew, hûn ji karûkirinên we agahdar dike. Lewre ew, tiştê di dilan de veşartî ye dizane.

**8.** Dema tengezarîyek digihîje însan, berê xwe dide Rabbê xwe û dûa dike. Paşê (di şûna wê tengasîyê de) dema ji cem xwe nîmetekî didê, ew wê lavahîya ku berê de dikir ji bîr dike û ji bo ku mirovan ji rêya wî bixerifîne ji Allah re şirîkan çêdike. Bibêje: "Bi kufra xwe hinekî din xweş bijî. Lewre tu ji ehlê agir î."

**9.** (Ma ev,) an jî ew kesê ku şevên xwe di qiyam û secdê de diborîne û xwe ji (ezabê) axîretê diparêze û bi hêvîya rahmeta Allah ji dil û bênavber (îbadetê Allah dike, bixêrtir e)? Ma ew ê zana û yên nezan qet dibin wekhev? Enceq ew ên aqilmend şîret digirin.

**10.** Bibêje: "Gelî evdên min ên îman anîne! Ji Rabbê xwe bitirsin û xwe biparêzin! Ji bo kesên li vê dinyayê qencî kirine re qencî heye. Erdê Allah fireh e. (Ji cihê ku hûn nikaribin dînê xwe bijîn hîcret bikin.) Bitenê ecira/xelata sebirvanan bêhisab tê dayîn."

قُلْ اِنّ۪ٓي اُمِرْتُ اَنْ اَعْبُدَ اللّٰهَ مُخْلِصًا لَهُ الدّ۪ينَۙ ﴿١١﴾ وَاُمِرْتُ
لِاَنْ اَكُونَ اَوَّلَ الْمُسْلِم۪ينَ ﴿١٢﴾ قُلْ اِنّ۪ٓي اَخَافُ اِنْ عَصَيْتُ رَبّ۪ي
عَذَابَ يَوْمٍ عَظ۪يمٍ ﴿١٣﴾ قُلِ اللّٰهَ اَعْبُدُ مُخْلِصًا لَهُ د۪ين۪يۙ ﴿١٤﴾ فَاعْبُدُوا
مَا شِئْتُمْ مِنْ دُونِه۪ۜ قُلْ اِنَّ الْخَاسِر۪ينَ الَّذ۪ينَ خَسِرُٓوا اَنْفُسَهُمْ
وَاَهْل۪يهِمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ اَلَا ذٰلِكَ هُوَ الْخُسْرَانُ الْمُب۪ينُ ﴿١٥﴾ لَهُمْ
مِنْ فَوْقِهِمْ ظُلَلٌ مِنَ النَّارِ وَمِنْ تَحْتِهِمْ ظُلَلٌۜ ذٰلِكَ يُخَوِّفُ اللّٰهُ بِه۪
عِبَادَهُۜ يَا عِبَادِ فَاتَّقُونِ ﴿١٦﴾ وَالَّذ۪ينَ اجْتَنَبُوا الطَّاغُوتَ اَنْ يَعْبُدُوهَا
وَاَنَابُٓوا اِلَى اللّٰهِ لَهُمُ الْبُشْرٰىۚ فَبَشِّرْ عِبَادِۙ ﴿١٧﴾ اَلَّذ۪ينَ يَسْتَمِعُونَ
الْقَوْلَ فَيَتَّبِعُونَ اَحْسَنَهُۜ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ هَدٰيهُمُ اللّٰهُ وَاُو۬لٰٓئِكَ هُمْ
اُو۬لُوا الْاَلْبَابِ ﴿١٨﴾ اَفَمَنْ حَقَّ عَلَيْهِ كَلِمَةُ الْعَذَابِۜ اَفَاَنْتَ تُنْقِذُ
مَنْ فِي النَّارِۚ ﴿١٩﴾ لٰكِنِ الَّذ۪ينَ اتَّقَوْا رَبَّهُمْ لَهُمْ غُرَفٌ مِنْ فَوْقِهَا
غُرَفٌ مَبْنِيَّةٌۙ تَجْر۪ي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُۜ وَعْدَ اللّٰهِۜ لَا يُخْلِفُ اللّٰهُ
الْم۪يعَادَ ﴿٢٠﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ اَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَسَلَكَهُ يَنَاب۪يعَ
فِي الْاَرْضِ ثُمَّ يُخْرِجُ بِه۪ زَرْعًا مُخْتَلِفًا اَلْوَانُهُ ثُمَّ يَه۪يجُ فَتَرٰيهُ
مُصْفَرًّا ثُمَّ يَجْعَلُهُ حُطَامًاۜ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَذِكْرٰى لِاُو۬لِي الْاَلْبَابِ ﴿٢١﴾

**11.** Bibêje: "Ez bi vêya hatime fermankirin ku ez dîn jê re xalis bikim û evdîtîya Allah bikim."

**12.** "Û bi vêya hatime emirkirin ku ez bibim ewilê/pêşîkê muslîman (ew evdên ku şirkê terk kirine û bi tewhîdê berê xwe dane Allah)."

**13.** Bibêje: "Eger ez ji Rabbê xwe re îsyanê bikim, ez ji ezabê rojeke mezin ditirsim."

**14.** Bibêje: "Ez dînê xwe jê re xalis dikim û bitenê evdîtîya wî dikim."

**15.** (Bibêje:) "Hûn ji xeynî wî kî dixwazin jê re îbadet bikin." Bibêje: "Bi rastî yên xisirîne ew in ku roja qiyametê xwe û ehlê xwe xisirandine. Baldar bin! Xusrana vikîvekirî ev bixwe ye."

**16.** Ji wan re di ser wan re tebeqeyên ji agir hene û di bin wan de jî tebeqe (yên ji agir) hene. Ev, ew (cehennem) e ku Allah bi wê evdên xwe ditirsîne. Gelî evdên min! Ji min bitirsin û xwe biparêzin.

**17.** Ji ew ên ku xwe ji evdîtîya taxût diparêzin û berê xwe didin Allah re mizgînî heye. Mizgînê bide evdên min.

(Ji bo têgeha/qewrama Taxût bnr. 2/ Baqara, 256)

**18.** Ew li gotinê guhdarî dikin û tabiê ya herî xweşik dibin. Evana, kesên ku Allah hîdayet daye wan in. Evana, kesên aqilmend bixwe ne.

**19.** Ma ew kesê ku peyva ezabê li ser heq bûye (û ev ên ha qet dibin wekhev)? Ew ê di agir de ye ma qey tu yê wî xelas bikî?

**20.** Lê belê ew ên ji Rabbê xwe ditirsin û xwe diparêzin re xurfeyên/odeyên (ji bo mêvanên taybet hatine amadekirin) hene û li ser wan jî xurfeyên avakirî hene ku di binê wan de çem diherikin. Weada Allah... Bêguman Allah ji weada xwe navegere.

**21.** Ma qey te nedît ku Allah ji esmanan avê dadixîne û li ser rûyê erdê bi avzênan (û kanîyan) ve diherikîne? Paşê bi wê jî çandinîyên rengîn derdixîne û piştre ew zûwa dibe û tu wê zerbûyî dibînî. Paşê dike qirş û qalên hişk û hilweşîyayî. Bêguman di vê de (li ser bihorbarîya jiyana dinyayê de) ji bo aqilmendan şîretek heye.

اَفَمَنْ شَرَحَ اللّٰهُ صَدْرَهُ لِلْاِسْلَامِ فَهُوَ عَلٰى نُورٍ مِنْ رَبِّهٖۜ فَوَيْلٌ
لِلْقَاسِيَةِ قُلُوبُهُمْ مِنْ ذِكْرِ اللّٰهِۜ اُو۬لٰٓئِكَ فٖي ضَلَالٍ مُبٖينٍ ﴿٢٢﴾
اَللّٰهُ نَزَّلَ اَحْسَنَ الْحَدٖيثِ كِتَابًا مُتَشَابِهًا مَثَانِيَۗ تَقْشَعِرُّ
مِنْهُ جُلُودُ الَّذٖينَ يَخْشَوْنَ رَبَّهُمْۚ ثُمَّ تَلٖينُ جُلُودُهُمْ وَقُلُوبُهُمْ
اِلٰى ذِكْرِ اللّٰهِۜ ذٰلِكَ هُدَى اللّٰهِ يَهْدٖي بِهٖ مَنْ يَشَٓاءُۜ وَمَنْ يُضْلِلِ
اللّٰهُ فَمَا لَهُ مِنْ هَادٍ ﴿٢٣﴾ اَفَمَنْ يَتَّقٖي بِوَجْهِهٖ سُٓوءَ الْعَذَابِ
يَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ وَقٖيلَ لِلظَّالِمٖينَ ذُوقُوا مَا كُنْتُمْ تَكْسِبُونَ ﴿٢٤﴾
كَذَّبَ الَّذٖينَ مِنْ قَبْلِهِمْ فَاَتٰيهُمُ الْعَذَابُ مِنْ حَيْثُ
لَا يَشْعُرُونَ ﴿٢٥﴾ فَاَذَاقَهُمُ اللّٰهُ الْخِزْيَ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۚ وَلَعَذَابُ
الْاٰخِرَةِ اَكْبَرُۢ لَوْ كَانُوا يَعْلَمُونَ ﴿٢٦﴾ وَلَقَدْ ضَرَبْنَا لِلنَّاسِ
فٖي هٰذَا الْقُرْاٰنِ مِنْ كُلِّ مَثَلٍ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَۚ ﴿٢٧﴾ قُرْاٰنًا عَرَبِيًّا
غَيْرَ ذٖي عِوَجٍ لَعَلَّهُمْ يَتَّقُونَ ﴿٢٨﴾ ضَرَبَ اللّٰهُ مَثَلًا رَجُلًا فٖيهِ
شُرَكَٓاءُ مُتَشَاكِسُونَ وَرَجُلًا سَلَمًا لِرَجُلٍۜ هَلْ يَسْتَوِيَانِ
مَثَلًاۜ اَلْحَمْدُ لِلّٰهِۚ بَلْ اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٢٩﴾ اِنَّكَ مَيِّتٌ وَاِنَّهُمْ
مَيِّتُونَ ﴿٣٠﴾ ثُمَّ اِنَّكُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ عِنْدَ رَبِّكُمْ تَخْتَصِمُونَ ﴿٣١﴾

**22.** Ma ew kesê ku Allah singa wî ji îslamê re vekiribe û li ser nûreke ji Rabbê xwe be (qet dibe weke wî kesê ku qelbê wî mohrkirî ye û di nava tarîtîyan de ye)? Weyl li halê wan kesan be ku (digel navê Allah tê zikirkirin jî qelbên wan nerm nabe û) qelbên wan ji hêla bêzikrîya Allah ve hişk bûye! Evana di xerifîyeke vikîvekirî de ne.

**23.** Allah, herî xweşiktirê peyvan (Qur'an) wek Kitêb daxistîye ku hin ji wan (ayetan) dişibin hevdu û hin (ayet) jî dubare dibin. Ji ber vê, ew ên ji Rabbê xwe ditirsin çermê wan direcife/mûyê canê wan digijgije. Paşê qelbên wan û çermên wan ji zikra Allah re aram/nerm dibe. Ha ev, hîdayeta Allah e. Ji kî re bixwaze bi wê hîdayet dike. Allah her kî averê kiribe, êdî qet tu kesekî ku rêya rast nîşanî wî bide tune.

**24.** Ew ê roja qiyametê hewl dide (ji ber ku dest û mile wî girêdayî ne) bi rûyê xwe ji ezabê xerab xwe biparêze (qet dibe wekî wî yê ku ketîye cennetê û ji ezabê rizgar bûye?) Ji zaliman re wiha tê gotin: "Tiştê ku we qezenc kiriye bitamînin."

**25.** Ew ên berîya wan jî derewandin û ezab ji alîyekî ku qet haya wan jê tunebû, ji wan re hat.

**26.** Allah, di heyata dinyayê de riswatî bi wan da tamkirin. Ezabê axîretê mezintir e. Xwezî bizanîbûna!

**27.** Sond be, me di vê Qur'anê de ji bo însanan gelek mîsalan daye da ku ew jê şîret bigirin.

**28.** Me bi vê Qur'ana Erebî (mîsalan da) ku tê de qet tu xwarîtî/şaşîtî tune. Hêvî heye ku bitirsin û xwe biparêzin.

**29.** Allah (ji bo muşrîk û muwahhîd) mîsalek da: "Koleyekî ku çend heb kesên bi hev nexweş li ser wî şirîk in û koleyekî ku di bin emrê yek kesî de ye... Ev herdu mîsal qet dibin wekhev? Hamd ji Allah re ye. Berevajî, pirên wan nizanin.
(Kesê muşrîk, ji zehf îlâhan re evdîtîyê dike. Hêvîya her yekî ji wan îlâhan jî cuda ye. Dema yek ji wan qayîl bike ya din hêrs dibe. Lê Rabbê kesê muwahhîd yek e. Diyar e ku Rabbê wî çi dixwaze û ji çi razî ye. Ji ber vê rewşê kesê muwahhîd ji amelên xwe ewledar û dilrihetî û li ser îstîqametê ye (14/Îbrahîm, 24-25). Lê kesê muşrîk di nava gumreşîyan de ye û bêhizûr û bê îstîqrar e (14/Îbrahîm, 26; 22/Hecc, 31). )

**30.** Muheqeq, wê tu jî bimirî û ew jî dê bimirin.

**31.** Piştre jî hûn ê, roja qiyametê di hizûra Rabbê xwe de doz li hevdu bikin.




فَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنْ كَذَبَ عَلَى اللّٰهِ وَكَذَّبَ بِالصِّدْقِ
اِذْ جَٓاءَهُۜ اَلَيْسَ ف۪ي جَهَنَّمَ مَثْوًى لِلْكَافِر۪ينَ ﴿٣٢﴾ وَالَّذ۪ي
جَٓاءَ بِالصِّدْقِ وَصَدَّقَ بِه۪ٓ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْمُتَّقُونَ ﴿٣٣﴾ لَهُمْ
مَا يَشَٓاؤُ۫نَ عِنْدَ رَبِّهِمْۜ ذٰلِكَ جَزٰٓؤُا الْمُحْسِن۪ينَۚ ﴿٣٤﴾
لِيُكَفِّرَ اللّٰهُ عَنْهُمْ اَسْوَاَ الَّذ۪ي عَمِلُوا وَيَجْزِيَهُمْ
اَجْرَهُمْ بِاَحْسَنِ الَّذ۪ي كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٣٥﴾ اَلَيْسَ اللّٰهُ
بِكَافٍ عَبْدَهُۜ وَيُخَوِّفُونَكَ بِالَّذ۪ينَ مِنْ دُونِه۪ۜ وَمَنْ
يُضْلِلِ اللّٰهُ فَمَا لَهُ مِنْ هَادٍۚ ﴿٣٦﴾ وَمَنْ يَهْدِ اللّٰهُ فَمَا لَهُ
مِنْ مُضِلٍّۜ اَلَيْسَ اللّٰهُ بِعَز۪يزٍ ذِي انْتِقَامٍ ﴿٣٧﴾ وَلَئِنْ سَاَلْتَهُمْ
مَنْ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ لَيَقُولُنَّ اللّٰهُۜ قُلْ اَفَرَاَيْتُمْ
مَا تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اِنْ اَرَادَنِيَ اللّٰهُ بِضُرٍّ هَلْ هُنَّ كَاشِفَاتُ
ضُرِّه۪ٓ اَوْ اَرَادَن۪ي بِرَحْمَةٍ هَلْ هُنَّ مُمْسِكَاتُ رَحْمَتِه۪ۜ قُلْ
حَسْبِيَ اللّٰهُۜ عَلَيْهِ يَتَوَكَّلُ الْمُتَوَكِّلُونَ ﴿٣٨﴾ قُلْ يَا قَوْمِ اعْمَلُوا
عَلٰى مَكَانَتِكُمْ اِنّ۪ي عَامِلٌۚ فَسَوْفَ تَعْلَمُونَۙ ﴿٣٩﴾
مَنْ يَأْت۪يهِ عَذَابٌ يُخْز۪يهِ وَيَحِلُّ عَلَيْهِ عَذَابٌ مُق۪يمٌ ﴿٤٠﴾

**32.** Ma ji wî kesê ku li ser (navê) Allah derewan dibêje û rastîya ku jê re hatîye diderewîne zalimtir kî heye? Ma qey di cehennemê de ji kafiran re cih tune?

**33.** Ew ê ya rast anîye û ew ên ku wî tesdîq dikin jî ha ew yên mutteqî bixwe ne.

**34.** Li cem Rabbê wan, ew çi daxwaz bikin ji wan re heye. Ev, xelata muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin e.

**35.** Allah, ji bo amelên wan ên xerab yên li dinyayê kirine bibexşîne û di muqabilê ya ku kirine de wan bi ya herî qenc xelat bike (wisan kiriye).

**36.** Erê ma qey Allah têra evdê xwe nake? Te, ji xeynî wî bi (îlâh) ên (sexte) ditirsînin. Allah her kî averê kiribe, êdî qet tu kesekî ku rêya rast nîşanî wî bide tune.

(Ji bo helwesta îmanî ya li hemberî tehdîdên ehlê şirkê bnr. 6/En'âm, 82.)

**37.** Allah, her kî hîdayet bike, tu kes nikare wî bixerifîne. Allah, ne ew e ku xwedî îzzet û zuntîqam/heyfsitên e?

**38.** Eger tu ji wan bipirsî "Kî erd û esman xuliqandîye?" bêguman wê bibêjin: "Allah!". Bibêje: "Ew ên ji xeynî Allah ku we ji wan re dûa dikirin, we ew dîtin? Eger Allah ji bo min zerarekî daxwaz bike, ma ew ê zerara wî dê ji ser min rakin? An jî eger ji bo min rahmetekî daxwaz bike ma ew ê ji rahmeta wî re wê bibin asteng?" Bibêje: "Allah besî min e. Ew ên tewekkul dikin, bila bitenê tewekkulê wî bikin."

(Kesê muşrîk, digel îdîa bike ku bi Allah (ac) bawer e jî ew îdîaya wî betal e. Ji bo îzaha berfireh bnr. 23/Mu'mînûn, 84-90 û daxuyanîya wê.)

**39.** Bibêje: "Gelî qewmê min! Hûn li ser halê/cihê xwe amel bikin. Bêguman ez ê jî bikim. Di pir nêz de hûn ê bizanibin/fêm bikin."

**40.** "Ka ew ezabê riswaker wê were serê kî û ew ezabê bênavber wê di ser kî de biqewime. (Di pir nêz de hûn ê bizanibin/fêm bikin.)

اِنَّٓا اَنْزَلْنَا عَلَيْكَ الْكِتَابَ لِلنَّاسِ بِالْحَقِّۚ فَمَنِ اهْتَدٰى
فَلِنَفْسِهٖۚ وَمَنْ ضَلَّ فَاِنَّمَا يَضِلُّ عَلَيْهَاۚ وَمَٓا اَنْتَ عَلَيْهِمْ
بِوَكِيلٍ ﴿٤١﴾ اَللّٰهُ يَتَوَفَّى الْاَنْفُسَ حِينَ مَوْتِهَا وَالَّتِى
لَمْ تَمُتْ فِى مَنَامِهَاۚ فَيُمْسِكُ الَّتِى قَضٰى عَلَيْهَا الْمَوْتَ
وَيُرْسِلُ الْاُخْرٰٓى اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّىۜ اِنَّ فِى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ
لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ ﴿٤٢﴾ اَمِ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ شُفَعَٓاءَۜ قُلْ
اَوَلَوْ كَانُوا لَا يَمْلِكُونَ شَيْـًٔا وَلَا يَعْقِلُونَ ﴿٤٣﴾ قُلْ
لِلّٰهِ الشَّفَاعَةُ جَمِيعاًۜ لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ ثُمَّ اِلَيْهِ
تُرْجَعُونَ ﴿٤٤﴾ وَاِذَا ذُكِرَ اللّٰهُ وَحْدَهُ اشْمَاَزَّتْ قُلُوبُ الَّذِينَ
لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِۚ وَاِذَا ذُكِرَ الَّذِينَ مِنْ دُونِهٖٓ اِذَا هُمْ
يَسْتَبْشِرُونَ ﴿٤٥﴾ قُلِ اللّٰهُمَّ فَاطِرَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ عَالِمَ
الْغَيْبِ وَالشَّهَادَةِ اَنْتَ تَحْكُمُ بَيْنَ عِبَادِكَ فِيمَا كَانُوا
فِيهِ يَخْتَلِفُونَ ﴿٤٦﴾ وَلَوْ اَنَّ لِلَّذِينَ ظَلَمُوا مَا فِى الْاَرْضِ
جَمِيعاً وَمِثْلَهُ مَعَهُ لَافْتَدَوْا بِهٖ مِنْ سُٓوءِ الْعَذَابِ يَوْمَ
الْقِيٰمَةِۜ وَبَدَا لَهُمْ مِنَ اللّٰهِ مَا لَمْ يَكُونُوا يَحْتَسِبُونَ ﴿٤٧﴾

**41.** Bêguman me ev Kitêb ji bo însanan ji te re bi heqî daxist. Her kî hîdayet bibîne (bide pey heqîyê) ji bo xwe hîdayet dîtîye. Her kî jî (bi rû vegerandina heqîyê) bixerife di aleyha xwe de xerifîye. Tu, li ser wan ne wekîl î.

**42.** Dema ku wê bimirin Allah, rûhê wan (însanan) distîne. (Rûhê wî) yê ku (bedena wî) nemirîye jî di xewa wî de distîne. Der heqê kî de hukmê mirinê dabe (rûhê wî) distîne. Ew ê din (ya ku di xew de ye) jî heta demeke diyarkirî serbest berdide. Bêşik di vê de, ji bo qewmekî difikirin re ayet hene.

**43.** Nexwe ji xeynî Allah (wan ji bo xwe) hin şefaetvanan girtine? Bibêje: “Digel ku ew (ji bo şefaetê) ne xwedî (raye) ne û (li ser îbadeta we ya ji wan re) hiş di ber de nabin jî (hûn ê dîsa wan ji xwe re bikin şefaetvan)?”

**44.** Bibêje: “Hemû şefaet aîdê Allah e. Serwerîya/ nemirîye erd û esmanan aîdê wî ye. Paşê hûn ê bi bal wî ve bên vegerandin.”
(Di Qur’anê de ji bo têgeha Şefaetê: Bnr, 43/Zuxruf, 86)

**45.** Dema ku navê Allah bi yekane (li ser tewhîdê) tê zikirkirin, qelbê wan ên ku bi axîretê nebawer in bi (kift û) gerizin dikerixe. Lê dema (îlâhên sexte) yên ji xeynî Allah tên zikirkirin (tu dinêrî ku) hema kêfxweş dibin.

**46.** Bibêje: “Ya Allahê min ê xaliqê erd û esmanan û xwedîyê agahîyên xeyb û eşkerehîyê! Di navbera evdên xwe de li ser ya ku tê de ketine îxtîlafê de, ew ê ku hukim dide tu yî.

**47.** Eger hemû tiştên li ser rûyê erdê û bi qasî wê jî ji zilimkaran re hebûya, ji ber xerabîya ezaba roja qiyametê (xelas bibin) wê feda bikirana. (Lewre ew roj) ya ku qet hisab nedikirin ji hêla/ji alîyê Allah ve tê eşkere kirin.
(Ew ên bi axîretê nebawer in wê heqbûna axîretê bibînin û ew ên hêvîdarê pûtan in wê bibînin ku ew pût qethîyen nikarin şefaetê bikin û ew mucrîmên/sûcdarên bi bijarebûna xwe bawer in jî wê bibînin ku ew ehlê ezab bixwe ne...)

وَبَدَا لَهُمْ سَيِّـَٔاتُ مَا كَسَبُوا وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِهٖ
يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٤٨﴾ فَاِذَا مَسَّ الْاِنْسَانَ ضُرٌّ دَعَانَاۘ ثُمَّ اِذَا خَوَّلْنَاهُ
نِعْمَةً مِنَّاۙ قَالَ اِنَّمَٓا اُو۫تٖيتُهُ عَلٰى عِلْمٍۜ بَلْ هِيَ فِتْنَةٌ وَلٰكِنَّ
اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٤٩﴾ قَدْ قَالَهَا الَّذٖينَ مِنْ قَبْلِهِمْ
فَمَٓا اَغْنٰى عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿٥٠﴾ فَاَصَابَهُمْ سَيِّـَٔاتُ
مَا كَسَبُواۜ وَالَّذٖينَ ظَلَمُوا مِنْ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ سَيُصٖيبُهُمْ سَيِّـَٔاتُ
مَا كَسَبُواۙ وَمَا هُمْ بِمُعْجِزٖينَ ﴿٥١﴾ اَوَلَمْ يَعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ يَبْسُطُ
الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَٓاءُ وَيَقْدِرُۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٥٢﴾
قُلْ يَا عِبَادِيَ الَّذٖينَ اَسْرَفُوا عَلٰٓى اَنْفُسِهِمْ لَا تَقْنَطُوا
مِنْ رَحْمَةِ اللّٰهِۜ اِنَّ اللّٰهَ يَغْفِرُ الذُّنُوبَ جَمٖيعًاۜ اِنَّهُ هُوَ الْغَفُورُ
الرَّحٖيمُ ﴿٥٣﴾ وَاَنٖيبُٓوا اِلٰى رَبِّكُمْ وَاَسْلِمُوا لَهُ مِنْ قَبْلِ
اَنْ يَأْتِيَكُمُ الْعَذَابُ ثُمَّ لَا تُنْصَرُونَ ﴿٥٤﴾ وَاتَّبِعُٓوا اَحْسَنَ
مَٓا اُنْزِلَ اِلَيْكُمْ مِنْ رَبِّكُمْ مِنْ قَبْلِ اَنْ يَأْتِيَكُمُ الْعَذَابُ
بَغْتَةً وَاَنْتُمْ لَا تَشْعُرُونَۙ ﴿٥٥﴾ اَنْ تَقُولَ نَفْسٌ يَا حَسْرَتٰى
عَلٰى مَا فَرَّطْتُ فٖي جَنْبِ اللّٰهِ وَاِنْ كُنْتُ لَمِنَ السَّاخِرٖينَۙ ﴿٥٦﴾

**48.** Ew xerabîyên ku kiribûn ji bo wan derkete holê û bi wê (ezab) a ku tinazê xwe pê dikirin re hatin dorpêçkirin.

**49.** Çi dema zerarek bigihîje însan ji me re dûa dike. Paşê ku em ji alî xwe ve nîmetek didin wî, dibêje: “Ev, ji ber zanîna li cem min ji min re hatîye dayîn (an jî Allah dizane ku ez layiqê wê me ev da min).” (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî ew, fitneyek/îmtîhanek e. Lê pirên wan nezan in.

**50.** (Wê peyvê) ew ên berîya wan de jî gotibûn. Ew (xerabî) yên kiribûn qet tu feyde neda wan.

**51.** Axir (ew ezaba berdêla) xerabîyên wan ên kirine hat serê wan. Ji nav wan jî ên zalim, di muqabilê xerabîyên kirine de wê ezab bê serê wan. Û ew nikarin (Allah) aciz/neçar bihêlin.

**52.** Ma qey pê agahdar nebûn ku Allah ji kî re bixwaze rizqê wî fireh dike (û ji kî re jî bixwaze) teng dike? Bêguman di vêya de ji bo civakeke mumîn re ayet hene.

**53.** Bibêje: “Gelî evdên min ên (bi kirina gunehên pirzêde) di aleyha nefsên xwe de zêde pêş de çûne! Ji rahmeta Allah hêvîya xwe nebirin. Bêguman Allah, hemû gunehan efû dike. Lewre ew, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**54.** Hêj ku ezab ji we re nehatîye ber bi Rabbê xwe ve vegerin û teslîmê wî bibin. Paşê alîkarî jî li we nayê kirin.

**55.** Berîya ku haya we jê çêbe ji we re ezab ji nîşka ve nehatîye, bibin tabiê wê ya herî xweşiktirê ku Rabbê we ji bo we nazil kiriye.

**56.** Berîya ku her nefs bêje: “Ji ber qisûrên min ên der heqê Allah de weyl li min be û ez bi rastî ji tinazkaran bûm.” (Berê xwe bidin Allah û bibin tabiê yên ku nazil kiriye).

اَوْ تَقُولَ لَوْ اَنَّ اللّٰهَ هَدٰين۪ى لَكُنْتُ مِنَ الْمُتَّق۪ينَۙ ﴿٥٧﴾
اَوْ تَقُولَ ح۪ينَ تَرَى الْعَذَابَ لَوْ اَنَّ ل۪ى كَرَّةً فَاَكُونَ
مِنَ الْمُحْسِن۪ينَ ﴿٥٨﴾ بَلٰى قَدْ جَٓاءَتْكَ اٰيَات۪ى فَكَذَّبْتَ بِهَا
وَاسْتَكْبَرْتَ وَكُنْتَ مِنَ الْكَافِر۪ينَ ﴿٥٩﴾ وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِ
تَرَى الَّذ۪ينَ كَذَبُوا عَلَى اللّٰهِ وُجُوهُهُمْ مُسْوَدَّةٌۜ اَلَيْسَ
ف۪ى جَهَنَّمَ مَثْوًى لِلْمُتَكَبِّر۪ينَ ﴿٦٠﴾ وَيُنَجِّى اللّٰهُ الَّذ۪ينَ اتَّقَوْا
بِمَفَازَتِهِمْۘ لَا يَمَسُّهُمُ السُّٓوءُ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ﴿٦١﴾ اَللّٰهُ خَالِقُ
كُلِّ شَيْءٍۘ وَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ وَك۪يلٌ ﴿٦٢﴾ لَهُ مَقَال۪يدُ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَالَّذ۪ينَ كَفَرُوا بِاٰيَاتِ اللّٰهِ اُو۬لٰٓئِكَ
هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿٦٣﴾ قُلْ اَفَغَيْرَ اللّٰهِ تَأْمُرُٓونّ۪ٓى اَعْبُدُ اَيُّهَا الْجَاهِلُونَ ﴿٦٤﴾
وَلَقَدْ اُو۫حِىَ اِلَيْكَ وَاِلَى الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِكَۚ لَئِنْ
اَشْرَكْتَ لَيَحْبَطَنَّ عَمَلُكَ وَلَتَكُونَنَّ مِنَ الْخَاسِر۪ينَ ﴿٦٥﴾
بَلِ اللّٰهَ فَاعْبُدْ وَكُنْ مِنَ الشَّاكِر۪ينَ ﴿٦٦﴾ وَمَا قَدَرُوا اللّٰهَ
حَقَّ قَدْرِه۪ۗ وَالْاَرْضُ جَم۪يعًا قَبْضَتُهُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ وَالسَّمٰوَاتُ
مَطْوِيَّاتٌ بِيَم۪ينِه۪ۜ سُبْحَانَهُ وَتَعَالٰى عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٦٧﴾

**57.** An jî berîya ku wiha bibêje: “Eger Allah ez bigihandima hîdayetê ez ê jî bibûma ji Mutteqîyan.”

**58.** An jî berîya wê dema ku ezabê bibîne, bibêje: “Xwezî ji min re fersendekî min a din hebûya û ez bibûma ji muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin.” (Berê xwe bidin Allah û bi ya ku daxistîye re îman bînin).

**59.** (Nexêr, ne wisan e!) Bi rastî ayetên min ji te re hatibû lê te ew derewandin û (li dij wan) te quretî kir û tu bûyî ji kafiran.”

**60.** Roja qiyametê tu dibînî ku ew ên li dij Allah derew kirine, rûyên wan reş e. Ma qey di cehennemê de ji qureyan re cih tune!

**61.** Allah ji ber serkeftina Mutteqîyan (bi rizgarîya cehennemê û bi dest xistina cennetê) wan xelas dike. Xerabî nagihîje wan û ew xemgîn jî nabin.

**62.** Allah, xaliqê her tiştî ye. Û ew, li ser her tiştî wekîl e.

**63.** Miftên/enextarên (xezîneyên) erd û esmanan yên wî ne. Ew ên ku ayetên Allah înkar dikin ha yên di xusranê de ne ew bixwe ne.

**64.** Bibêje: “Gelî cahilan! Ma hûn li min emir dikin ku ez ji xeynî Allah îbadetê tiştekî din bikim?”

**65.** Sond be ji te re û ji (pêxember) ên berîya te re wiha hatîye wehîykirin: “Eger tu şirîk çêkî wê hemû amelên te pûç bibin û tu yê bibî wan ên xesirî.”

(Ji bo tarîf û cureyên şirkê û aqûbeta muşrîkan bnr. 4/Nîsa, 48)

**66.** Bilekîs, bitenê ji Allah re îbadet bike û bibe ji şikurdaran.

**67.** Wan qedrê Allah bi heqî teqdîr nekirin/bi awayê lêhatî rêzdarîya wî negirtin. (Qudret û azameta Allah li gor pêdivîyê fêm nekirin û tênegihîştin.) Hal ev e ku roja qiyametê temamê erdê di qevza wî de ye. Asîman jî di destê wî yê rastê de li hev pêçandî ye. Ew (Allah), ji tiştên ku ew pê şirîk çêdikin munezzeh û berz/bilind e.

وَنُفِخَ فِي الصُّورِ فَصَعِقَ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَمَنْ فِي الْاَرْضِ
اِلَّا مَنْ شَٓاءَ اللّٰهُۜ ثُمَّ نُفِخَ فِيهِ اُخْرٰى فَاِذَا هُمْ قِيَامٌ يَنْظُرُونَ ﴿٦٨﴾
وَاَشْرَقَتِ الْاَرْضُ بِنُورِ رَبِّهَا وَوُضِعَ الْكِتَابُ وَجِٓيءَ بِالنَّبِيِّنَ
وَالشُّهَدَٓاءِ وَقُضِيَ بَيْنَهُمْ بِالْحَقِّ وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿٦٩﴾ وَوُفِّيَتْ
كُلُّ نَفْسٍ مَا عَمِلَتْ وَهُوَ اَعْلَمُ بِمَا يَفْعَلُونَ ﴿٧٠﴾
وَسِيقَ الَّذِينَ كَفَرُٓوا اِلٰى جَهَنَّمَ زُمَرًاۜ حَتّٰٓى اِذَا جَٓاؤُ۫هَا
فُتِحَتْ اَبْوَابُهَا وَقَالَ لَهُمْ خَزَنَتُهَٓا اَلَمْ يَاْتِكُمْ رُسُلٌ مِنْكُمْ
يَتْلُونَ عَلَيْكُمْ اٰيَاتِ رَبِّكُمْ وَيُنْذِرُونَكُمْ لِقَٓاءَ
يَوْمِكُمْ هٰذَاۜ قَالُوا بَلٰى وَلٰكِنْ حَقَّتْ كَلِمَةُ الْعَذَابِ
عَلَى الْكَافِرِينَ ﴿٧١﴾ قِيلَ ادْخُلُٓوا اَبْوَابَ جَهَنَّمَ خَالِدِينَ فِيهَاۚ
فَبِئْسَ مَثْوَى الْمُتَكَبِّرِينَ ﴿٧٢﴾ وَسِيقَ الَّذِينَ اتَّقَوْا رَبَّهُمْ
اِلَى الْجَنَّةِ زُمَرًاۜ حَتّٰٓى اِذَا جَٓاؤُ۫هَا وَفُتِحَتْ اَبْوَابُهَا وَقَالَ
لَهُمْ خَزَنَتُهَا سَلَامٌ عَلَيْكُمْ طِبْتُمْ فَادْخُلُوهَا خَالِدِينَ ﴿٧٣﴾
وَقَالُوا الْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذ۪ي صَدَقَنَا وَعْدَهُ وَاَوْرَثَنَا الْاَرْضَ نَتَبَوَّاُ
مِنَ الْجَنَّةِ حَيْثُ نَشَٓاءُۚ فَنِعْمَ اَجْرُ الْعَامِلِينَ ﴿٧٤﴾

**68.** Li sûrê tê pifkirin. Ew ên ku Allah daxwaz kirine ne tê de, hemû heyînên li erd û esmanan (weke zerplêdayî ji tirsa) dimirin. Paşê cereke din tê pifkirin (tu dibînî ku) di cih de radibin û vedinêrin.

**69.** Erd, bi nûra Rabbê te ronahî dibe. Kitêb (a ku amel tê de nivîsandî ne di nîverastê de) tê danîn. Pêxember û şahid têne anîn û di navbera wan de bi heq tê hukimkirin. Neheqî jî li wan nayê kirin.

**70.** Her nefs çi kiribe (berdêla) keda wî bêkêmasî jê re tê dayîn. Ew, bi ya ku wan kiriye herî çêtir dizane.

**71.** Kafiran, zumre zumre ber bi cehennemê ve tên ajotin. Dema ku têne cem wê derî li wan vedibin û notirvanên wê (cehennemê) ji wan re dibêjin: “Ma ji nav we pêxemberên ku ayetên Rabbê we ji we re dixwendin û bi leqayîhatina vê rojê hûn hişyar dikirin nehatibûn?” Dibêjin: “Belê (hatin).” Lê peyva ezabê li ser kafiran heq bûye.

**72.** Ji wan re tê gotin: “Di derîyê wê de têkevin cehennemê ya ku hûn ê di wir de bêdawî bimînin. Cihê ku ew kesên pozbilind wê tê de bimînin çi qas xerab e.”

**73.** Ew ên ji Rabbê xwe ditirsin û xwe biparêzin wê zumre ber bi cennetê ve bên ajotin. Dema ku têne cem wê derî li wan vedibin û notirvanên wê (cennetê) ji wan re dibêjin: “Silav li ser we be, hûn pîrûpak hatin. Êdî wek mayîndarên ebedî têkevin wê derê.”

**74.** Dibêjin: “Hamd ji wî Allahê re ku ji weada xwe sadiq ma û em kirin warisê erzê (cennetê) da ku li wê derê em li gor daxwaza xwe tevbigerin. Xelata xebatkaran çi qas xweşik e.”

وَتَرَى الْمَلٰٓئِكَةَ حَآفّ۪ينَ مِنْ حَوْلِ الْعَرْشِ يُسَبِّحُونَ بِحَمْدِ
رَبِّهِمْۚ وَقُضِيَ بَيْنَهُمْ بِالْحَقِّ وَق۪يلَ الْحَمْدُ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿٧٥﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
حٰمٓۜ ﴿١﴾ تَنْز۪يلُ الْكِتَابِ مِنَ اللّٰهِ الْعَز۪يزِ الْعَل۪يمِۙ ﴿٢﴾ غَافِرِ الذَّنْبِ
وَقَابِلِ التَّوْبِ شَد۪يدِ الْعِقَابِ ذِي الطَّوْلِۜ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۜ اِلَيْهِ الْمَص۪يرُ ﴿٣﴾
مَا يُجَادِلُ ف۪ٓي اٰيَاتِ اللّٰهِ اِلَّا الَّذ۪ينَ كَفَرُوا فَلَا يَغْرُرْكَ تَقَلُّبُهُمْ
فِي الْبِلَادِ ﴿٤﴾ كَذَّبَتْ قَبْلَهُمْ قَوْمُ نُوحٍ وَالْاَحْزَابُ مِنْ بَعْدِهِمْۖ
وَهَمَّتْ كُلُّ اُمَّةٍ بِرَسُولِهِمْ لِيَأْخُذُوهُ وَجَادَلُوا بِالْبَاطِلِ لِيُدْحِضُوا
بِهِ الْحَقَّ فَاَخَذْتُهُمْ فَكَيْفَ كَانَ عِقَابِ ﴿٥﴾ وَكَذٰلِكَ حَقَّتْ كَلِمَتُ
رَبِّكَ عَلَى الَّذ۪ينَ كَفَرُٓوا اَنَّهُمْ اَصْحَابُ النَّارِۘ ﴿٦﴾ اَلَّذ۪ينَ يَحْمِلُونَ
الْعَرْشَ وَمَنْ حَوْلَهُ يُسَبِّحُونَ بِحَمْدِ رَبِّهِمْ وَيُؤْمِنُونَ بِه۪
وَيَسْتَغْفِرُونَ لِلَّذ۪ينَ اٰمَنُواۚ رَبَّنَا وَسِعْتَ كُلَّ شَيْءٍ رَحْمَةً وَعِلْمًا
فَاغْفِرْ لِلَّذ۪ينَ تَابُوا وَاتَّبَعُوا سَب۪يلَكَ وَقِهِمْ عَذَابَ الْجَح۪يمِ ﴿٧﴾

**75.** Tu dibînî ku melaîketan (bi awayê) dorpêçkirina hawîrdorê erşê, Rabbê xwe bi hamd tesbîh dikin. Di navbera wan de hukim hatîye dayîn û wiha hatîye gotin: “Hamd ji Allahê Rabbê aleman re be.”



## 40. SÛREYA MÛMÎN (XAFÎR)

*(Sûreya Mûmîn (Xafîr) Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heştê û pênc (85) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya çilemîn e. Di ayeta 28. de behsa zilamekî ji malbata Firewn ku îmâna xwe vedişart tê kirin. Sûreya Mûmîn (Xafîr), navê xwe ji vê ayetê sitendîye. Ji heft sûreyên ku li pey hevdu tên û bi hurûfên muqattaa ya “Hâ-Mîm” dest pê dikin a yekemîn sûreya Mûmîn (Xafîr) e. Mijara bingehîn ya sûreya Mûmîn (Xafîr) ev e: Vexwendina asê nemayîna li dij îslamê û girêdayîbûna îslamê ya bi dilsozîtî. Ji bo vê jî di sûreyê de derfet û nîmetên ku ji însanan re hatine bexişandin û aqûbeta qenc û xeraban ya li axîretê û di dirêjahîya dîrokê de têkoşîna navbera îman û kufrê de bi meqseda îbretê tê zikirkirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Hâ, Mîm.

**2.** Nazil kirina (vê) Kitêbê ji alî Allahê ku (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (zanayê her tiştî) Alîm e.




**3.** (Ew, ji alîyê Allahê) gunehan efû dike û tobeyan qebûl dike û xwedî lutf û îhsana zêde ve (hatîye daxistin). Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. Veger jê re ye.

**4.** Ji xeynî kafiran tu kes der heqê ayetê Allah de nîqaş nakin. Gera wan a di nav welatan de (ya bi hêz û bi şatafat) bila te nexerîne/nexapîne.

**5.** Berîya wan de qewmê Nûh û paşê jî komên (ji bo neyartîya pêxember hatine cem hev) derewandin. Her ummetek xwestin ku pêxemberên xwe (hepis bikin an jî bikujin). (Wan) xwestin ku (di oxira) batil de (û bi rêbazên batil) têbikoşin û lingê heqîyê bişemitînin (ji holê rakin). Min ew (bi ezab) girtin. (De binêre) ka çawaye cezakirina min?

**6.** Bi vî awayî peyva (ezabê ya) Rabbê te li ser kafiran heq bû. Bêguman ew, ehlê agir in.

**7.** Ew ên erşê hildigirin û li dora wê ne, Rabbê xwe bi hemd tesbîh dikin û îman pê tînin û ji bo mûmînan daxwaza bexişandinê dikin: “Rabbê me! Te bi rahmet û ilma xwe her tiştî dorpêç kiriye. Tu wan ên tobe kirine û didin pey rêya te mexfîret bike û wan ji ezabê cehennemê biparêze.”

رَبَّنَا وَاَدْخِلْهُمْ جَنَّاتِ عَدْنٍ الَّت۪ي وَعَدْتَهُمْ وَمَنْ صَلَحَ
مِنْ اٰبَٓائِهِمْ وَاَزْوَاجِهِمْ وَذُرِّيَّاتِهِمْۜ اِنَّكَ اَنْتَ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُۙ ﴿٨﴾
وَقِهِمُ السَّيِّـَٔاتِۜ وَمَنْ تَقِ السَّيِّـَٔاتِ يَوْمَئِذٍ فَقَدْ رَحِمْتَهُۜ
وَذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظ۪يمُ ﴿٩﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا يُنَادَوْنَ
لَمَقْتُ اللّٰهِ اَكْبَرُ مِنْ مَقْتِكُمْ اَنْفُسَكُمْ اِذْ تُدْعَوْنَ
اِلَى الْا۪يمَانِ فَتَكْفُرُونَ ﴿١٠﴾ قَالُوا رَبَّنَٓا اَمَتَّنَا اثْنَتَيْنِ
وَاَحْيَيْتَنَا اثْنَتَيْنِ فَاعْتَرَفْنَا بِذُنُوبِنَا فَهَلْ اِلٰى خُرُوجٍ
مِنْ سَب۪يلٍ ﴿١١﴾ ذٰلِكُمْ بِاَنَّهُٓ اِذَا دُعِيَ اللّٰهُ وَحْدَهُ كَفَرْتُمْۚ
وَاِنْ يُشْرَكْ بِه۪ تُؤْمِنُواۜ فَالْحُكْمُ لِلّٰهِ الْعَلِيِّ الْكَب۪يرِ ﴿١٢﴾
هُوَ الَّذ۪ي يُر۪يكُمْ اٰيَاتِه۪ وَيُنَزِّلُ لَكُمْ مِنَ السَّمَٓاءِ رِزْقًاۜ
وَمَا يَتَذَكَّرُ اِلَّا مَنْ يُن۪يبُ ﴿١٣﴾ فَادْعُوا اللّٰهَ مُخْلِص۪ينَ
لَهُ الدّ۪ينَ وَلَوْ كَرِهَ الْكَافِرُونَ ﴿١٤﴾ رَف۪يعُ الدَّرَجَاتِ
ذُو الْعَرْشِۚ يُلْقِي الرُّوحَ مِنْ اَمْرِه۪ عَلٰى مَنْ يَشَٓاءُ
مِنْ عِبَادِه۪ لِيُنْذِرَ يَوْمَ التَّلَاقِۙ ﴿١٥﴾ يَوْمَ هُمْ بَارِزُونَۚ لَا يَخْفٰى
عَلَى اللّٰهِ مِنْهُمْ شَيْءٌۜ لِمَنِ الْمُلْكُ الْيَوْمَۜ لِلّٰهِ الْوَاحِدِ الْقَهَّارِ ﴿١٦﴾

**8.** “Rabbê me! Tu wan bêxe cennetên Adn ku te li wan wead kiriye. Û wan û bavên wan û hevjînên wan û ji zurîyeta wan kesên salih jî (bêxe cennetên Adn). Bêguman tu, yê ku (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm î.”

**9.** “Wan ji xerabîyan biparêze. Wê rojê te kî ji xerabîyan parastibe, bêguman te merhamet lê kiriye. Û ev, xelasîyeke herî mezin e.”

**10.** Li kafiran jî wiha tê gazîkirin: “Xezeba Allah (ya li ser we, ji ber ku hûn bûne musteheqê cehennemê) ji wê hêrsa we ya ku hûn li nefsên xwe dikin pirzêde mezintir e. Lewre dema ku ji bo îman anînê hûn dihatin vexwendin we înkar dikir.”

**11.** Dibêjin: “Rabbê me! Te me du car kuşt û du car vejand. Me gunehên xwe îtîraf kir. Rêyeke derketina (ji vê derê) heye gelo?”

**12.** (Sedema) vê rewşa we (ev e), dema (hûn) bal bi Allahê wahîd û ehed re dihatin gazîkirin we înkar dikir. Lê dema jê re şirk dihate çêkirin we (bi vê) îman dianî. Êdî hukim aîdê wî Allahê ye ku (bi zat û sifetên xwe herî bilind) Alîy û (yê herî mezin) Kebîr e.

**13.** Ew ê ku ayetên xwe nîşanî we dide û ji bo we ji asîman riziq dadixîne ew e. Ji ew ên ku berê xwe didin Allah pê ve tu kes şîret nagire.

**14.** Ew ên kafir bi xweşa wan neçe/nexwazin jî dîn bitenê ji Allah re xalis bikin û jê re dûa bikin.

**15.** (Allah) ew e ku dereceyan bilind dike û xedîyê erşê ye. Ji bo hişyarkirina (însanan ya) roja gihîştinê ji kîjan evdê xwe re bixwaze, rûhê (wehîyê) bi emrê xwe dişîne ser (qelbê) wî.

**16.** Wê rojê, ew eşkere dibin. Ji wan qet tu tişt ji Allah re veşartî namîne. (Allah wiha gazî dike:) “Îro hakimîyet/serwerî yê kî ye?” Yê Allah e ku ew (di zat û fiêl û sifetên xwe de) Wahîd û (yê ku ji her tiştî re serî daye tewandin û xistîye bin hukmê xwe) Qahhar e.

اَلْيَوْمَ تُجْزٰى كُلُّ نَفْسٍ بِمَا كَسَبَتْؕ لَا ظُلْمَ الْيَوْمَؕ
اِنَّ اللّٰهَ سَرِيعُ الْحِسَابِ ﴿١٧﴾ وَاَنْذِرْهُمْ يَوْمَ الْاٰزِفَةِ اِذِ الْقُلُوبُ
لَدَى الْحَنَاجِرِ كَاظِمِينَؕ مَا لِلظَّالِمِينَ مِنْ حَمِيمٍ
وَلَا شَفِيعٍ يُطَاعُؕ ﴿١٨﴾ يَعْلَمُ خَٓائِنَةَ الْاَعْيُنِ وَمَا تُخْفِى الصُّدُورُ ﴿١٩﴾
وَاللّٰهُ يَقْضٖى بِالْحَقِّؕ وَالَّذٖينَ يَدْعُونَ مِنْ دُونِهٖ
لَا يَقْضُونَ بِشَيْءٍؕ اِنَّ اللّٰهَ هُوَ السَّمٖيعُ الْبَصٖيرُ ﴿٢٠﴾ اَوَلَمْ يَسٖيرُوا
فِى الْاَرْضِ فَيَنْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الَّذٖينَ
كَانُوا مِنْ قَبْلِهِمْؕ كَانُوا هُمْ اَشَدَّ مِنْهُمْ قُوَّةً وَاٰثَارًا
فِى الْاَرْضِ فَاَخَذَهُمُ اللّٰهُ بِذُنُوبِهِمْ وَمَا كَانَ لَهُمْ مِنَ اللّٰهِ
مِنْ وَاقٍ ﴿٢١﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ كَانَتْ تَاْتٖيهِمْ رُسُلُهُمْ
بِالْبَيِّنَاتِ فَكَفَرُوا فَاَخَذَهُمُ اللّٰهُؕ اِنَّهُ قَوِيٌّ شَدٖيدُ الْعِقَابِ ﴿٢٢﴾
وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا مُوسٰى بِاٰيَاتِنَا وَسُلْطَانٍ مُبٖينٍ ﴿٢٣﴾ اِلٰى فِرْعَوْنَ
وَهَامَانَ وَقَارُونَ فَقَالُوا سَاحِرٌ كَذَّابٌ ﴿٢٤﴾ فَلَمَّا جَٓاءَهُمْ
بِالْحَقِّ مِنْ عِنْدِنَا قَالُوا اقْتُلُٓوا اَبْنَٓاءَ الَّذٖينَ اٰمَنُوا مَعَهُ
وَاسْتَحْيُوا نِسَٓاءَهُمْؕ وَمَا كَيْدُ الْكَافِرٖينَ اِلَّا فٖى ضَلَالٍ ﴿٢٥﴾

**17.** Îro her nefsek wê berdêla ya ku bi dest xistîye bistîne. Îro zilim tune. Bêguman Allah serîu'lhisab (hisabsivik) e.

**18.** Tu wan bi Yewmu'l Azife/bi roja ku nêzîk dibe hişyar bike. Wê demê dil tên ber devan û (ji tirs û fikarê) dadiqurtînin. Ji bo zaliman ne dostekî nêz û ne jî şefaetvanekî ku şefaeta wî tê pêkanîn heye.

**19.** (Allah) nihêrînên xayîntî ya çavan û veşarîtîyên dilan dizane.

**20.** Allah, bi heq hukim dike. Lê ew ên ji xeynî Allah dûa li wan dikin nikarin li ser tu tiştî hukim bikin. Bêguman ew (belê ew), (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e.

**21.** Ma ew li ser rûyê erdê nagerin da ku binêrin aqubeta wan ummetên berîya wan (de jîyîne) bibînin? Ew, ji wan bi hêztir bûn û li ser rûyê erdê bi berhemên xwe jî ji wan herî serdesttir bûn. Ji ber gunehên wan Allah, ew (bi ezab) girtin. Qet tu kesekî ku wan ji Allah biparêze jî nebû.

**22.** (Sedema vê,) digel ku pêxemberên wan ji wan re delîlên vikîvekirî anîbûn lê wan înkar kiribûn. Ji ber vê yekê Allah wan zeft kir. Lewre ew, (yê xwedî hêz û quwwet) Qawîy û ezabê wî dijwar e.

**23.** Sond be, me Mûsa bi ayetên xwe û bi delîleke vikîvekirî şand.

**24.** Ji Fîrewn û Haman û Qarûn re... Gotin: "Sêhrbazekî pirzêde derewker e."

**25.** Çi dema ku ji cem me heqîyê ji wan re anîbû gotin: "Ew ên ku pê re îman anîne kurên wan bikujin, lê kêçên wan sax bihêlin." Hîleya kafiran muheqeq wê pûç derkeve.

(Fîrewn du caran fermana "kuştina zarokên kurîn û sax hiştina zarokên qîzîn" daye. Ya ewil, dema ku Mûsa (as) welidîbû; ya duyem jî wê dema piştî ku Mûsa (as) bi rîsaletê hate wezîfedarkirin çûbû cem Fîrewn û wî gazî bal bi Allah ve kiribû. Di navbera her du fermanan de cudahîyeke balkêş heye. Fermana yekem ji bo ku hejmara Benî Îsraîl kêm bike û bibe asteng da ku Benî Îsraîl nebin hêzeke sîyasî. Fermana duyem jî çawa ku di ayetê de hatîye diyarkirin ji hîle û kemîn pêkhatî ye. Tirsandina wan ên ku wê bi Mûsa (as) îman bînin jî ji bo insan bên ramandin ku ev bela û musîbetên tên serê wan bi sedema Mûsa (as) ye. Bi vî awayî wê insan vê tiştê bifikirin ku Mûsa (as) mirovekî pir taloke ye û dê ji wî û ji daweta wî ya ku ji otorîteya sîyasî re bixetere ye xwe dûr bihêlin.)

وَقَالَ فِرْعَوْنُ ذَرُونِى اَقْتُلْ مُوسٰى وَلْيَدْعُ رَبَّهُ ۚ اِنِّى اَخَافُ
اَنْ يُبَدِّلَ دِينَكُمْ اَوْ اَنْ يُظْهِرَ فِى الْاَرْضِ الْفَسَادَ ﴿٢٦﴾
وَقَالَ مُوسٰى اِنِّى عُذْتُ بِرَبِّى وَرَبِّكُمْ مِنْ كُلِّ مُتَكَبِّرٍ
لَا يُؤْمِنُ بِيَوْمِ الْحِسَابِ ﴿٢٧﴾ وَقَالَ رَجُلٌ مُؤْمِنٌ مِنْ اٰلِ فِرْعَوْنَ
يَكْتُمُ اِيمَانَهُ اَتَقْتُلُونَ رَجُلًا اَنْ يَقُولَ رَبِّىَ اللّٰهُ وَقَدْ
جَاۤءَكُمْ بِالْبَيِّنَاتِ مِنْ رَبِّكُمْ ۖ وَاِنْ يَكُ كَاذِبًا فَعَلَيْهِ كَذِبُهُ ۚ
وَاِنْ يَكُ صَادِقًا يُصِبْكُمْ بَعْضُ الَّذِى يَعِدُكُمْ ۖ اِنَّ اللّٰهَ
لَا يَهْدِى مَنْ هُوَ مُسْرِفٌ كَذَّابٌ ﴿٢٨﴾ يَا قَوْمِ لَكُمُ الْمُلْكُ
الْيَوْمَ ظَاهِرِينَ فِى الْاَرْضِ ۘ فَمَنْ يَنْصُرُنَا مِنْ بَاْسِ اللّٰهِ اِنْ جَاۤءَنَا ۖ
قَالَ فِرْعَوْنُ مَاۤ اُرِيكُمْ اِلَّا مَاۤ اَرٰى وَمَاۤ اَهْدِيكُمْ اِلَّا سَبِيلَ
الرَّشَادِ ﴿٢٩﴾ وَقَالَ الَّذِىۤ اٰمَنَ يَا قَوْمِ اِنِّىۤ اَخَافُ عَلَيْكُمْ مِثْلَ
يَوْمِ الْاَحْزَابِ ۙ ﴿٣٠﴾ مِثْلَ دَاْبِ قَوْمِ نُوحٍ وَعَادٍ وَثَمُودَ وَالَّذِينَ
مِنْ بَعْدِهِمْ ۖ وَمَا اللّٰهُ يُرِيدُ ظُلْمًا لِلْعِبَادِ ﴿٣١﴾ وَيَا قَوْمِ اِنِّىۤ اَخَافُ
عَلَيْكُمْ يَوْمَ التَّنَادِ ۙ ﴿٣٢﴾ يَوْمَ تُوَلُّونَ مُدْبِرِينَ ۚ مَا لَكُمْ
مِنَ اللّٰهِ مِنْ عَاصِمٍ ۚ وَمَنْ يُضْلِلِ اللّٰهُ فَمَا لَهُ مِنْ هَادٍ ﴿٣٣﴾

**26.** Firewn got: “Hûn min berdin da ku ez Mûsa bikujim. Ew jî (ji bo alîkarîyê) bila gazî Rabbê xwe bike. Ez ji vê ditirsim ku (Mûsa) dînê we biguherîne an jî li ser rûyê erdê fesadê derxîne.”
(Bnr. 7/A’râf, 110, 123)

**27.** Mûsa got: “Bêguman, ji her kesê qure ku bawerî bi roja hisabê nayne ez xwe dispêrim (Allah) ê ku Rabbê min û Rabbê we ye.”

**28.** Ji malbata Firewn zilamekî ku îmâna xwe vedişart wiha got: “Ji bo ku dibêje ‘Rabbê min Allah e.’ hûn ê zilamekî bikujin? Bêguman ji Rabbê we bi delîlên vikîvekirî ji we re hatîye. Eger mirovekî derewkar be, derewa wî di eleyha wî de ye. Na eger rast dibêje, qismek ji (ezab) a ku we pê tehdîd dike wê bê serê we. Bêşik Allah, kesê ku pirzêde derewan dike û ji hedê xwe dibore hîdayet nake.”

**29.** “Gelî qewmê min! Îro li ser rûyê erdê wek serdest, milk aîdê we ye. (Eger) ji hêla/ji alîyê Allah ve tengezarîyek were serê me, ka wê kî alîkarîya me bike?” Firewn got: “Ez bi tenê fikr û ramana xwe dibêjim û ez we enceq radigihînim ser rêya rast.”

**30.** Kesê ku îman anîbû wiha got: “Gelî qewmê min! Ez ji bo we ji rojeke weke roja ehzab/koman (ku helak bibûn) ditirsim.”

**31.** “(Ez ji encamekî) hewşêweya qewmê Nûh û Ad û Semûd û yên li pey wan de hatine, ditirsim. Allah ji bo evdên xwe neheqî/zilim naxwaze.”

**32.** “Gelî qewmê min! Bêguman ez, ji bo we ji roja hewar û qêrînê ditirsim.”

**33.** “Wê rojê hûn ê bi pişt xwe ve vegerin û birevin. Tu kesê parêzkar ku we ji Allah biparêze wê tune be. Allah kî xerifandibe, qet tu kesekî ku wî hîdayet bike tune.”

وَلَقَدْ جَٓاءَكُمْ يُوسُفُ مِنْ قَبْلُ بِالْبَيِّنَاتِ فَمَا زِلْتُمْ
فٖي شَكٍّ مِمَّا جَٓاءَكُمْ بِهٖۜ حَتّٰٓى اِذَا هَلَكَ قُلْتُمْ
لَنْ يَبْعَثَ اللّٰهُ مِنْ بَعْدِهٖ رَسُولاًۜ كَذٰلِكَ يُضِلُّ اللّٰهُ
مَنْ هُوَ مُسْرِفٌ مُرْتَابٌۚ ﴿٣٤﴾ اَلَّذٖينَ يُجَادِلُونَ فٖٓي اٰيَاتِ اللّٰهِ
بِغَيْرِ سُلْطَانٍ اَتٰيهُمْۜ كَبُرَ مَقْتًا عِنْدَ اللّٰهِ وَعِنْدَ الَّذٖينَ
اٰمَنُواۜ كَذٰلِكَ يَطْبَعُ اللّٰهُ عَلٰى كُلِّ قَلْبِ مُتَكَبِّرٍ
جَبَّارٍ ﴿٣٥﴾ وَقَالَ فِرْعَوْنُ يَا هَامَانُ ابْنِ لٖي صَرْحًا لَعَلّٖٓي
اَبْلُغُ الْاَسْبَابَۙ ﴿٣٦﴾ اَسْبَابَ السَّمٰوَاتِ فَاَطَّلِعَ اِلٰٓى اِلٰهِ مُوسٰى
وَاِنّٖي لَاَظُنُّهُ كَاذِبًاۜ وَكَذٰلِكَ زُيِّنَ لِفِرْعَوْنَ
سُٓوءُ عَمَلِهٖ وَصُدَّ عَنِ السَّبٖيلِۜ وَمَا كَيْدُ فِرْعَوْنَ
اِلَّا فٖي تَبَابٍ ﴿٣٧﴾ وَقَالَ الَّذٖٓي اٰمَنَ يَا قَوْمِ اتَّبِعُونِ اَهْدِكُمْ
سَبٖيلَ الرَّشَادِۚ ﴿٣٨﴾ يَا قَوْمِ اِنَّمَا هٰذِهِ الْحَيٰوةُ الدُّنْيَا مَتَاعٌۘ وَاِنَّ
الْاٰخِرَةَ هِيَ دَارُ الْقَرَارِ ﴿٣٩﴾ مَنْ عَمِلَ سَيِّئَةً فَلَا يُجْزٰٓى
اِلَّا مِثْلَهَاۚ وَمَنْ عَمِلَ صَالِحًا مِنْ ذَكَرٍ اَوْ اُنْثٰى وَهُوَ مُؤْمِنٌ
فَاُو۬لٰٓئِكَ يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ يُرْزَقُونَ فٖيهَا بِغَيْرِ حِسَابٍ ﴿٤٠﴾

**34.** Sond be, berê de Yûsuf jî bi delîlên vikîvekirî ji we re hatibû. Wê gavê hûn der heqê wan (delîlan) de ketibûn gumanê. Dema ew wefat kir we gotibû: "Allah, wê di pey wî de pêxemberekî neşîne." Allah, wan kesên gumandar û ji hedê xwe borîne ha wisan dixerifîne.

**35.** Ew in ku; digel ji wan re qet tu delîl nehatîye jî der heqê ayetên Allah de nîqaş dikin. Hêrsa li îndallah û li cem mûmînan (ji ber van amelên wan) mezin e. Allah, qelbê ew ê zordar û qure ha wisan mohr dike.

**36.** Firewn got: "Ya Haman, ji bo min bircekî ava bike. Hêvî heye ku ez ê bigihîjim rêyan."

**37.** "Ez ê (bigihîjim) rêyên esmanan da ku bi ser îlâhê Mûsa ve bibim! Bi rastî ez zen dikim ku ew derewkar e." Bi vî awayî amelê wî yê xerab pê xemilandî hate xuyakirin û ji rê (ya rasterast) hate girtin. Hîleya Firewn mehkûmê tunebûnê û xusranê ye.

**38.** Ew ê îman anîbû wiha got: "Gelî qewmê min! Tabiê min bibin da ku ez we bigihînim rêya rast."

**39.** "Gelî qewmê min! Ev jiyana dinyayê bitenê sûd wergirtinek (bihorbar) e. Lê esil cihwarê lêmayînê axîret e."

**40.** "Kî xerabîyekî bike, bi qasî ya ku kiriye wê berdêlê bibîne. Mêr dibe jin dibe kî jî wek mûmîn amelê salih bike evana, wê bikevin cennetê û di wir de bêhisab tên riziqandin."




وَيَا قَوْمِ مَا لِيٓ اَدْعُوكُمْ اِلَى النَّجٰوةِ وَتَدْعُونَنِيٓ
اِلَى النَّارِۜ ﴿٤١﴾ تَدْعُونَنِي لِاَكْفُرَ بِاللّٰهِ وَاُشْرِكَ بِهٖ
مَا لَيْسَ لِي بِهٖ عِلْمٌۘ وَاَنَا۬ اَدْعُوكُمْ اِلَى الْعَز۪يزِ الْغَفَّارِ ﴿٤٢﴾
لَا جَرَمَ اَنَّمَا تَدْعُونَنِيٓ اِلَيْهِ لَيْسَ لَهُ دَعْوَةٌ فِي الدُّنْيَا
وَلَا فِي الْاٰخِرَةِ وَاَنَّ مَرَدَّنَآ اِلَى اللّٰهِ وَاَنَّ الْمُسْرِف۪ينَ هُمْ
اَصْحَابُ النَّارِ ﴿٤٣﴾ فَسَتَذْكُرُونَ مَآ اَقُولُ لَكُمْۜ وَاُفَوِّضُ
اَمْر۪يٓ اِلَى اللّٰهِۜ اِنَّ اللّٰهَ بَص۪يرٌ بِالْعِبَادِ ﴿٤٤﴾ فَوَقٰيهُ اللّٰهُ سَيِّـَٔاتِ
مَا مَكَرُوا وَحَاقَ بِاٰلِ فِرْعَوْنَ سُٓوءُ الْعَذَابِۚ ﴿٤٥﴾
اَلنَّارُ يُعْرَضُونَ عَلَيْهَا غُدُوًّا وَعَشِيًّاۚ وَيَوْمَ تَقُومُ السَّاعَةُ
اَدْخِلُٓوا اٰلَ فِرْعَوْنَ اَشَدَّ الْعَذَابِ ﴿٤٦﴾ وَاِذْ يَتَحَٓاجُّونَ
فِي النَّارِ فَيَقُولُ الضُّعَفٰٓؤُا لِلَّذ۪ينَ اسْتَكْبَرُٓوا اِنَّا كُنَّا
لَكُمْ تَبَعًا فَهَلْ اَنْتُمْ مُغْنُونَ عَنَّا نَص۪يبًا مِنَ النَّارِ ﴿٤٧﴾
قَالَ الَّذ۪ينَ اسْتَكْبَرُٓوا اِنَّا كُلٌّ ف۪يهَٓا اِنَّ اللّٰهَ
قَدْ حَكَمَ بَيْنَ الْعِبَادِ ﴿٤٨﴾ وَقَالَ الَّذ۪ينَ فِي النَّارِ لِخَزَنَةِ
جَهَنَّمَ ادْعُوا رَبَّكُمْ يُخَفِّفْ عَنَّا يَوْمًا مِنَ الْعَذَابِ ﴿٤٩﴾

**41.** “Gelî qewmê min! Çi dibe ku; ez we vedixwînim xelasîyê lê hûn min gazî agir dikin?”

**42.** “Hûn, min gazî înkarkirina Allah û şirîk çêkirina bi tiştên ku der heqê wan de qet tu agahîya min tune dikin. Hal ev e ku ez, we gazî (Allah) ê ku (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (yê ku gunehan pirzêde mexfîret dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xaffar e dikim.

**43.** “Çare nîne! Ew tiştê hûn min gazî dikinê ne li dinyayê û ne jî li axîretê qet tu rûmet û gerewa wan tune. Vegera me bi bal Allah ve ye. Yên ji hedê xwe borîne, ewana ehlê agir in.”

**44.** “(Ev) a ku ez ji we re dibêjim hûn ê (di demeke nêz de) bi bîr bînin. Ez, karê xwe dispêrim Allah. Bêşik Allah, li ser evdên xwe basîr e/bînende ye.”

**45.** Allah, ew ji kemînên ku danîbûn parast û Firewn û malbata wî bi ezabê herî xerab dorpêç kir.

**46.** (Ezaba herî xerab ew e ku) sibeh û êvarê ew ji agir re têne rapêşkirin. Roja ku qiyamet radibe (wiha tê gotin:) “Malbata Firewn têxin ezaba herî dijwar.”

**47.** Wê dema ku bi sûcdarîya berhemberê hevdu bi hev dikevin, yên qelshiştî (mustezef) ji yên qure (mustekbîr) re dibêjin: “Bi rastî em tabiên we bûn. Hûn a niha dikarin qismekî agir ji ser me bidin alî?”

**48.** Ew ên qure/zordar dibêjin: "Em hemû tê de (di heman ezabê de) de ne. (Digel ku feyda me ji me bixwe re tune ka em ê ji bo we bikaribin çi bikin?) Bi rastî Allah, di navbera evdên xwe de hukim daye.”

(Ji bo rewşa wan lîder û pêşîyên ku meşrûîyeta xwe ji îslamê nastînin û gelên ku didin pey wan a li axîretê bnr. 2/Baqara, 167.)

**49.** Ew ên di agir de ne, ji nobedarên cehennemê re wiha dibêjin: “Ji Rabbê xwe re dûa bikin da ku rojek (be jî) ezabê me sivik bike.”

قَالُٓوا اَوَلَمْ تَكُ تَاْتٖيكُمْ رُسُلُكُمْ بِالْبَيِّنَاتِۜ قَالُوا بَلٰىۜ
قَالُوا فَادْعُواۚ وَمَا دُعَٓؤُا الْكَافِرٖينَ اِلَّا فٖي ضَلَالٍ ﴿٥٠﴾
اِنَّا لَنَنْصُرُ رُسُلَنَا وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا
وَيَوْمَ يَقُومُ الْاَشْهَادُۙ ﴿٥١﴾ يَوْمَ لَا يَنْفَعُ الظَّالِمٖينَ
مَعْذِرَتُهُمْ وَلَهُمُ اللَّعْنَةُ وَلَهُمْ سُٓوءُ الدَّارِ ﴿٥٢﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا
مُوسَى الْهُدٰى وَاَوْرَثْنَا بَنٖٓي اِسْرَٓائٖيلَ الْكِتَابَۙ ﴿٥٣﴾ هُدًى
وَذِكْرٰى لِاُولِي الْاَلْبَابِ ﴿٥٤﴾ فَاصْبِرْ اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ
حَقٌّ وَاسْتَغْفِرْ لِذَنْبِكَ وَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ
بِالْعَشِيِّ وَالْاِبْكَارِ ﴿٥٥﴾ اِنَّ الَّذٖينَ يُجَادِلُونَ
فٖٓي اٰيَاتِ اللّٰهِ بِغَيْرِ سُلْطَانٍ اَتٰيهُمْۙ اِنْ فٖي صُدُورِهِمْ
اِلَّا كِبْرٌ مَا هُمْ بِبَالِغٖيهِۚ فَاسْتَعِذْ بِاللّٰهِۜ اِنَّهُ هُوَ السَّمٖيعُ
الْبَصٖيرُ ﴿٥٦﴾ لَخَلْقُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ اَكْبَرُ مِنْ خَلْقِ
النَّاسِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٥٧﴾
وَمَا يَسْتَوِي الْاَعْمٰى وَالْبَصٖيرُ وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ وَلَا الْمُسٖٓيءُۜ قَلٖيلًا مَا تَتَذَكَّرُونَ ﴿٥٨﴾

**50.** (Nobedar) dibêjin: “Ma qey pêxemberên we bi delîlên eşkere ji we re nehatibûn?” Dibêjin: “Belê.” (Wê demê nobedar jî wiha) dibêjin: “Di vê rewşê de hûn bixwe dûa bikin. Dûayê kafiran di her halûkarî de pûç û bê feyde ye.”

**51.** Bêguman di heyata dinyayê de jî û di roja (Qiyametê) ku şahid (ji bo şahidîyê) radibin pîya jî em alîkarîya rasûlên xwe û mûmînan dikin.

**52.** Wê rojê ew hincetên/mazeretên zilimkaran feyde nade wan. Ji wan re lanet heye. Warê herî xerab jî ji wan re ye.

**53.** Sond be me hîdayet da Mûsa û me Benî Îsraîl jî kirin miratgirê Kitêbê.

**54.** (Ew,) ji bo aqilmendan hîdayet û şîret e.

**55.** (Nexwe) sebir bike. Bêguman weada Allah heq e. Ji bo gunehên xwe mexfîret bixwaze û sibeh û êvarê Rabbê xwe bi hamd tesbîh bike.

**56.** Digel ku ji wan re tu delîl nehatîye jî ew ên der heqê ayetên Allah de nîqaş dikin (hene)! Di singa wan de quretîyek wisan heye ku ew tu car nagihîjin wê. (Nexwe) tu xwe bispêre Allah. Bêguman ew (belê ew), (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e.

**57.** Bêguman xuliqandina erd û esmanan, ji xuliqandina însan herî mezintir e. Lê belê pirên însanan nizanin.

**58.** Kor û bînende nabin weke hev. Ew ê îman anîye û amelê salih dike û yê xerabîyê dike jî (nabe weke hev). Hûn çiqas hindik şîret digirin?

اِنَّ السَّاعَةَ لَاٰتِيَةٌ لَا رَيْبَ فٖيهَا وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ
لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٥٩﴾ وَقَالَ رَبُّكُمُ ادْعُونٖٓي اَسْتَجِبْ لَكُمْۜ
اِنَّ الَّذٖينَ يَسْتَكْبِرُونَ عَنْ عِبَادَتٖي سَيَدْخُلُونَ جَهَنَّمَ
دَاخِرٖينَ۟ ﴿٦٠﴾ اَللّٰهُ الَّذٖي جَعَلَ لَكُمُ الَّيْلَ لِتَسْكُنُوا فٖيهِ
وَالنَّهَارَ مُبْصِرًاۜ اِنَّ اللّٰهَ لَذُو فَضْلٍ عَلَى النَّاسِ وَلٰكِنَّ
اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَشْكُرُونَ ﴿٦١﴾ ذٰلِكُمُ اللّٰهُ رَبُّكُمْ
خَالِقُ كُلِّ شَيْءٍۢ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۘ فَاَنّٰى تُؤْفَكُونَ ﴿٦٢﴾
كَذٰلِكَ يُؤْفَكُ الَّذٖينَ كَانُوا بِاٰيَاتِ اللّٰهِ يَجْحَدُونَ ﴿٦٣﴾
اَللّٰهُ الَّذٖي جَعَلَ لَكُمُ الْاَرْضَ قَرَارًا وَالسَّمَٓاءَ بِنَٓاءً
وَصَوَّرَكُمْ فَاَحْسَنَ صُوَرَكُمْ وَرَزَقَكُمْ مِنَ الطَّيِّبَاتِۜ
ذٰلِكُمُ اللّٰهُ رَبُّكُمْۚ فَتَبَارَكَ اللّٰهُ رَبُّ الْعَالَمٖينَ ﴿٦٤﴾
هُوَ الْحَيُّ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ فَادْعُوهُ مُخْلِصٖينَ لَهُ الدّٖينَۜ
اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿٦٥﴾ قُلْ اِنّٖي نُهٖيتُ اَنْ اَعْبُدَ
الَّذٖينَ تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ لَمَّا جَٓاءَنِيَ الْبَيِّنَاتُ
مِنْ رَبّٖي وَاُمِرْتُ اَنْ اُسْلِمَ لِرَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿٦٦﴾

**59.** Bêşik wê roja qiyametê were, di wê de qet tu guman tune. Lê belê pirên însanan îman naynin.

**60.** Rabbê we wiha got: "Hûn dûa ji min re bikin ez jî îcabeta dûayên we bikim. Qet tu guman tune ku ew ên di îbadetkirina min de quretîyê dikin wê bi situxwarî/binpêkirî bikevin cehennemê.

(Di hedîseke ku Numan b. Beşîr rîwayet kiriye de Rasûlullah (ass) wiha qotîye: "Dûa, îbadet bixwe ye." û piştre vê ayetê xwendîye. (Ebu Davud, 1479; Tirmizi, 2969))

**61.** Allah e; ew ê ku ji bo hûn tê de sikûnetê bibînin şev xuliqandîye û (hûn bişixulin û li rizqê xwe bigerin jî) roj ronahî kiriye. Bi rastî Allah, li ser însanan xwedî lutf û îhsan e, lê belê pirên însanan ne şikurdar in.

**62.** Ha ev, Rabbê we û xaliqê her tiştî Allah e. Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh tune. (Digel vê) çawa dibe ku hûn (ji tewhîdê bi bal şirkê ve) tên vegerandin?

**63.** Ew ên ayetên Allah înkar dikin, ha wisan tên vegerandin.

**64.** Allah e; ew ê ku erd ji bo (ku li ser bê jîyîn) ji we re kiriye cihwar û asîman jî kiriye bîna/tawan. Sûret daye we û sûretên we herî xweşik çêkiriye û we bi tiştên paqij riziqandîye. Ha ev, Rabbê we Allah e. Allahê Rabbê aleman çiqas berz/bilind û mûbarek/pîroz e.

**65.** Ew (xwedî heyat û yê ku heyatê dide hemû mexluqatan) Hayy e. Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh nîn e. (Di wê rewşê de) dîn bitenê ji bo wî xalis bikin û ji wî re dûa bikin. Hamd, bitenê aîdê Allahê Rabbê aleman e.

**66.** Bibêje: "(Bi sedema) delîlên vikîvekirî ku ji min re hatine ez ji îbadeta wan (heyînên ku) hûn dûa/lavahî li wan dikin hatime men kirin. Û ez bi teslîmîyeta Allahê Rabbê aleman re hatime emirkirin."

هُوَ الَّذ۪ي خَلَقَكُمْ مِنْ تُرَابٍ ثُمَّ مِنْ نُطْفَةٍ ثُمَّ مِنْ عَلَقَةٍ
ثُمَّ يُخْرِجُكُمْ طِفْلًا ثُمَّ لِتَبْلُغُٓوا اَشُدَّكُمْ ثُمَّ لِتَكُونُوا
شُيُوخًاۚ وَمِنْكُمْ مَنْ يُتَوَفّٰى مِنْ قَبْلُ وَلِتَبْلُغُٓوا اَجَلًا
مُسَمًّى وَلَعَلَّكُمْ تَعْقِلُونَ ﴿٦٧﴾ هُوَ الَّذ۪ي يُحْي۪ وَيُم۪يتُۚ فَاِذَا
قَضٰٓى اَمْرًا فَاِنَّمَا يَقُولُ لَهُ كُنْ فَيَكُونُ ﴿٦٨﴾ اَلَمْ تَرَ
اِلَى الَّذ۪ينَ يُجَادِلُونَ ف۪ٓي اٰيَاتِ اللّٰهِۜ اَنّٰى يُصْرَفُونَۚ ﴿٦٩﴾ اَلَّذ۪ينَ
كَذَّبُوا بِالْكِتَابِ وَبِمَٓا اَرْسَلْنَا بِه۪ رُسُلَنَاۜ فَسَوْفَ يَعْلَمُونَۙ ﴿٧٠﴾
اِذِ الْاَغْلَالُ ف۪ٓي اَعْنَاقِهِمْ وَالسَّلَاسِلُۜ يُسْحَبُونَۙ ﴿٧١﴾ فِي الْحَم۪يمِ ثُمَّ
فِي النَّارِ يُسْجَرُونَۚ ﴿٧٢﴾ ثُمَّ ق۪يلَ لَهُمْ اَيْنَ مَا كُنْتُمْ تُشْرِكُونَۙ ﴿٧٣﴾
مِنْ دُونِ اللّٰهِۜ قَالُوا ضَلُّوا عَنَّا بَلْ لَمْ نَكُنْ نَدْعُوا مِنْ قَبْلُ
شَيْـًٔاۜ كَذٰلِكَ يُضِلُّ اللّٰهُ الْكَافِر۪ينَ ﴿٧٤﴾ ذٰلِكُمْ بِمَا
كُنْتُمْ تَفْرَحُونَ فِي الْاَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّ وَبِمَا كُنْتُمْ
تَمْرَحُونَۚ ﴿٧٥﴾ اُدْخُلُٓوا اَبْوَابَ جَهَنَّمَ خَالِد۪ينَ ف۪يهَاۚ فَبِئْسَ
مَثْوَى الْمُتَكَبِّر۪ينَ ﴿٧٦﴾ فَاصْبِرْ اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّۚ فَاِمَّا نُرِيَنَّكَ
بَعْضَ الَّذ۪ي نَعِدُهُمْ اَوْ نَتَوَفَّيَنَّكَ فَاِلَيْنَا يُرْجَعُونَ ﴿٧٧﴾

**67.** Wî; hûn ji axê û paşê ji dilopek av û piştre ji xwînpareyekê (alaqê) xuliqandîye. Paşê hûn wek bebek (ji zikê dêya we) derdixe û paşê ji bo ku hûn bigihîjin çaxa gihandinê û piştre hûn ixtîyar bibin (umir/temen dibexşîne). Hinek ji we hêj berê de canê wan tên sitendin. (Allah, teqdîra jiyanê wiha kiriye da ku) ji bo hûn aqil bigirin û bigihîjin demeke diyarkirî.

**68.** Yê ku vedijîne û dimirîne ew e. Dema ji bo (çêbûna) karekî hukim dide, bitenê jê re dibejê “Bibe!” Ew jî çêdibe.

**69.** Te wan ên ku der heqê ayetên Allah de nîqaş dikin, nedît? Çawa (ji heqîyê bi bal batil ve) tên vegerandin.

**70.** Ew ên Kitêb û (wehîy) a ku me pêxemberan pê şandîye, derewandine wê pir nêz de bizanibin/fêm bikin.

**71.** Bi toqa di sitûyên wan de û bi zincîran tên xirikandin.

**72.** Di nava ava kelandî de... Paşê wê di agir de bên vexistin.

**73.** Paşê ji wan re tê gotin: “Ew ên we bi wan şirîkatî dikirin ka li ku derê ne?”

**74.** “Ji xeynî Allah...” Dibêjin: “Winda bûn, çûn. (Bi rastî, fêm bû ku) me qet ji tu tiştî re dûa nedikir.” Ha Allah, kafiran wiha dixerifîne.

**75.** Ev, ji ber ku bi neheqî şaqizandin û nepixandina we ya li ser rûyê erdê ye.

**76.** Wek mayînde yên bêdawî ji derîyê cehennemê bikevinê. Cihwarê qureyan ya ku wê tê de bimînin çiqas xerab e.

**77.** Sebir bike! Weada Allah heq e. Dixwazî qismek (ezab) a ku me li wan wead kiriye em nîşanî te bidin an jî berîya (tu bibînî) em te bimirînin (ferq nake). Ew ê bi bal me ve bên vegerandin (wê ezaba ku pê hatine tehdîdkirin bitamînin).

وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا رُسُلًا مِنْ قَبْلِكَ مِنْهُمْ مَنْ قَصَصْنَا عَلَيْكَ
وَمِنْهُمْ مَنْ لَمْ نَقْصُصْ عَلَيْكَ وَمَا كَانَ لِرَسُولٍ اَنْ يَأْتِيَ
بِاٰيَةٍ اِلَّا بِاِذْنِ اللّٰهِ فَاِذَا جَٓاءَ اَمْرُ اللّٰهِ قُضِيَ بِالْحَقِّ وَخَسِرَ
هُنَالِكَ الْمُبْطِلُونَ ﴿٧٨﴾ اَللّٰهُ الَّذٖي جَعَلَ لَكُمُ الْاَنْعَامَ
لِتَرْكَبُوا مِنْهَا وَمِنْهَا تَأْكُلُونَ ﴿٧٩﴾ وَلَكُمْ فٖيهَا مَنَافِعُ
وَلِتَبْلُغُوا عَلَيْهَا حَاجَةً فٖي صُدُورِكُمْ وَعَلَيْهَا وَعَلَى الْفُلْكِ
تُحْمَلُونَ ﴿٨٠﴾ وَيُرٖيكُمْ اٰيَاتِهٖ فَاَيَّ اٰيَاتِ اللّٰهِ تُنْكِرُونَ ﴿٨١﴾
اَفَلَمْ يَسٖيرُوا فِي الْاَرْضِ فَيَنْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الَّذٖينَ
مِنْ قَبْلِهِمْ كَانُٓوا اَكْثَرَ مِنْهُمْ وَاَشَدَّ قُوَّةً وَاٰثَارًا
فِي الْاَرْضِ فَمَٓا اَغْنٰى عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿٨٢﴾ فَلَمَّا
جَٓاءَتْهُمْ رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِ فَرِحُوا بِمَا عِنْدَهُمْ مِنَ الْعِلْمِ
وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِهٖ يَسْتَهْزِؤُنَ ﴿٨٣﴾ فَلَمَّا رَاَوْا بَأْسَنَا
قَالُٓوا اٰمَنَّا بِاللّٰهِ وَحْدَهُ وَكَفَرْنَا بِمَا كُنَّا بِهٖ مُشْرِكٖينَ ﴿٨٤﴾
فَلَمْ يَكُ يَنْفَعُهُمْ اٖيمَانُهُمْ لَمَّا رَاَوْا بَأْسَنَا سُنَّتَ اللّٰهِ
الَّتٖي قَدْ خَلَتْ فٖي عِبَادِهٖ وَخَسِرَ هُنَالِكَ الْكَافِرُونَ ﴿٨٥﴾

**78.** Sond be me berîya te jî pêxemberan şand. Me ji te re behsa hinekan kir û behsa hinekan jî nekiriye. Heta destûra Allah nebe, tu pêxember nikare ayetek/mucîzeyek bîne. Dema ku emrê Allah bê, bi heq hukim tê dayîn û ehlê batil li wê derê dixisirin.

**79.** Allah, ji bo hûn li hinekan siwar bin û hinekan jî bixwin heywanan heyî kiriye.

**80.** Di wan (heywanan) de ji bo we feyde hene. Ji bo ku hun (bi rêwingîyê) bigihîjin daxwazên ku di nava we de ye me ew heyî kirin. (Wekî din) hûn li ser wan û hem jî li ser keştîyan (cihê ku hûn dixwazin bigihîjinê) tên kişandin.

**81.** (Allah) ayetên xwe nîşanî we dide. Ka hûn ê kîjan ayetê wî înkar bikin?

**82.** Ma qey ji bo aqubeta ew ên berîya wan (jîyîne) bibînin li ser rûyê erdê nagerin? Hejmara wan (ji Mekkîyan) zêdetir bûn û ji wan bi hêztir bûn û berhemên wan ên li ser rûyê erdê jî herî zehftir bûn. Tiştên ku bi dest xistibûn (li dij ezabê Allah) qet tu feyde neda wan.

**83.** Dema pêxemberên wan bi delîlên vikîvekirî ji wan re hat, ew bi sedema ilma/zanîna/teknolojîya li cem xwe bi şaqizîtî nepixîn. (Lê belê) ew (ezaba ku) tinazê xwe pê dikirin wan ji her alî ve dorpêç kir.

**84.** Dema ku ezabê me dîtin wiha gotin: “Me bi Allahê wahîd/yekane îman anî û tiştên ku me jê re dikir şirîk înkar kir.”

**85.** Îman anîna wan a dema ezaba me ya biêş û jan dibînin, qet tu feyde neda wan. (Ev,) der heqê qewmên bihurîn de sunnetullah/qanûnên îlâhî yên neguhêrbar in. Ha li wê derê (dema sunnetullah pêk hat) kafir li ber xusranê ketin.

سُورَةُ فُصِّلَتْ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ اَرْبَعٌ وَخَمْسُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
حٰمٓ ﴿١﴾ تَنْز۪يلٌ مِنَ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِۚ ﴿٢﴾ كِتَابٌ فُصِّلَتْ اٰيَاتُهُ قُرْاٰناً
عَرَبِيّاً لِقَوْمٍ يَعْلَمُونَۙ ﴿٣﴾ بَش۪يراً وَنَذ۪يراًۚ فَاَعْرَضَ اَكْثَرُهُمْ فَهُمْ
لَا يَسْمَعُونَ ﴿٤﴾ وَقَالُوا قُلُوبُنَا ف۪ٓي اَكِنَّةٍ مِمَّا تَدْعُونَٓا اِلَيْهِ وَف۪ٓي اٰذَانِنَا
وَقْرٌ وَمِنْ بَيْنِنَا وَبَيْنِكَ حِجَابٌ فَاعْمَلْ اِنَّنَا عَامِلُونَ ﴿٥﴾ قُلْ اِنَّمَا
اَنَا۬ بَشَرٌ مِثْلُكُمْ يُوحٰٓى اِلَيَّ اَنَّمَٓا اِلٰهُكُمْ اِلٰهٌ وَاحِدٌ فَاسْتَق۪يمُٓوا
اِلَيْهِ وَاسْتَغْفِرُوهُۜ وَوَيْلٌ لِلْمُشْرِك۪ينَۙ ﴿٦﴾ اَلَّذ۪ينَ لَا يُؤْتُونَ الزَّكٰوةَ
وَهُمْ بِالْاٰخِرَةِ هُمْ كَافِرُونَ ﴿٧﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
لَهُمْ اَجْرٌ غَيْرُ مَمْنُونٍ ﴿٨﴾ قُلْ اَئِنَّكُمْ لَتَكْفُرُونَ بِالَّذ۪ي خَلَقَ
الْاَرْضَ ف۪ي يَوْمَيْنِ وَتَجْعَلُونَ لَهُٓ اَنْدَاداًۜ ذٰلِكَ رَبُّ الْعَالَم۪ينَۚ ﴿٩﴾
وَجَعَلَ ف۪يهَا رَوَاسِيَ مِنْ فَوْقِهَا وَبَارَكَ ف۪يهَا وَقَدَّرَ ف۪يهَٓا اَقْوَاتَهَا
ف۪ٓي اَرْبَعَةِ اَيَّامٍۜ سَوَٓاءً لِلسَّٓائِل۪ينَ ﴿١٠﴾ ثُمَّ اسْتَوٰٓى اِلَى السَّمَٓاءِ وَهِيَ دُخَانٌ
فَقَالَ لَهَا وَلِلْاَرْضِ ائْتِيَا طَوْعاً اَوْ كَرْهاًۜ قَالَتَٓا اَتَيْنَا طَٓائِع۪ينَ ﴿١١﴾

## 41. SÛREYA FUSSÎLET

*(Sûreya Fussîlet, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pêncî û çar (54) ayet e. )*

*Di Qur'anê de sûreya çil û yekemîn e. Sûreya Fussîlet navê xwe ji kelîmeya "Fussîlet" yanê 'bi tefsîlat hate ravekirin' ku di ayeta sêyemîn de dibore sitendîye. Di sûreya Fussîlet de ji taybetîyên Qur'ana ku ji alî Allahê Rahmân û Rahîm ve hatîye daxistin tê behskirin. Ligel vê, mijarên xelatkirina mûmînan û qûdreta Allah (ac) û aqûbeta xerab ên qewmên kafir ya li dinya û axîretê û menkirina ji marûfê tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Hâ, Mîm.

**2.** (Ev Kitêb,) ji hêla/ji alîyê (Allahê ku di nefsa xwe de xwedî merhamet) Rahmân û (yê ku rahmeta xwe radigihîne evdên xwe) Rahîm ve hatîye daxistin.

**3.** (Ev,) ji qewmekî zana re Kitêbek e ku ayetên wê bi Erebî tên xwendin û wek mufesselbûyî/kitekitbûyî hatîye ravekirin.

(Ji bo hikmetên ku Qur'ana Kerîm Kitêbeke mufesselbûyî/kitekitbûyî ye, bnr. 6/En'âm, 55.)

**4.** Wek mizgînvan û hişyarker... Pirên wan rû vegerandin. Ew guhdarî nakin.

**5.** Gotin: "Qelbên me ji wê tiştê ku tu me lê vedixwînî re nuxamtî ye. Di guhên me de jî giranîyek heye. Di navbera me û te de perdeyek heye. Êdî tu (çi ji destê te bê) bike. Bêguman (tiştê ku ji destê me tê) em ê jî bikin.

**6.** Bibêje: "Ez, enceq weke we mirovek im. Ji min re tê wehîykirin ku îlâhê we yek îlâhek tenê ye. (Herwiha) berê xwe bidin wî û jê mexfîret bixwazin. Weyl li wan muşrîkan..."

**7.** Ew in ku; zekâtê nadin û ew biqethî axîretê jî înkar dikin.

**8.** Bêşik ji wan ên ku îman anîne û amelên salih kirine re jî xelatekî bêkêmasî/bênavber heye.

**9.** Bibêje: "Nexwe hûn in, ji wî (Allah) ê ku erd di du rojan de xuliqandîye re kafirtî dikin û jê re hemkûfan/şirîkan çêdikin? Ew, Rabbê aleman e."

**10.** Li ser (erdê) de (ji çiyan) singên sabît çikandîye û bereketê xistîye wê derê û di çar rojên hevber de ji bo yên ku tê de li rizqê xwe digerin re (qûtê wan) teqdîr kiriye.

**11.** Paşê berê xwe da esmanê ku ew hêj dûman bû. Jê re û ji erdê re got: "Bi dilê xwe yan jî bê dilê xwe werin." (Her duyan jî) gotin: "Em bi daxwaza xwe hatin."

فَقَضٰيهُنَّ سَبْعَ سَمٰوَاتٍ فٖي يَوْمَيْنِ وَاَوْحٰى فٖي كُلِّ سَمَٓاءٍ
اَمْرَهَاۜ وَزَيَّنَّا السَّمَٓاءَ الدُّنْيَا بِمَصَابٖيحَۗ وَحِفْظاًۜ ذٰلِكَ تَقْدٖيرُ
الْعَزٖيزِ الْعَلٖيمِ ﴿١٢﴾ فَاِنْ اَعْرَضُوا فَقُلْ اَنْذَرْتُكُمْ صَاعِقَةً مِثْلَ
صَاعِقَةِ عَادٍ وَثَمُودَۜ ﴿١٣﴾ اِذْ جَٓاءَتْهُمُ الرُّسُلُ مِنْ بَيْنِ اَيْدٖيهِمْ
وَمِنْ خَلْفِهِمْ اَلَّا تَعْبُدُٓوا اِلَّا اللّٰهَۜ قَالُوا لَوْ شَٓاءَ رَبُّنَا لَاَنْزَلَ مَلٰٓئِكَةً
فَاِنَّا بِمَٓا اُرْسِلْتُمْ بِهٖ كَافِرُونَ ﴿١٤﴾ فَاَمَّا عَادٌ فَاسْتَكْبَرُوا
فِي الْاَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّ وَقَالُوا مَنْ اَشَدُّ مِنَّا قُوَّةًۜ اَوَلَمْ يَرَوْا اَنَّ اللّٰهَ
الَّذٖي خَلَقَهُمْ هُوَ اَشَدُّ مِنْهُمْ قُوَّةًۜ وَكَانُوا بِاٰيَاتِنَا يَجْحَدُونَ ﴿١٥﴾
فَاَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ رٖيحاً صَرْصَراً فٖٓي اَيَّامٍ نَحِسَاتٍ لِنُذٖيقَهُمْ
عَذَابَ الْخِزْيِ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۜ وَلَعَذَابُ الْاٰخِرَةِ اَخْزٰى وَهُمْ
لَا يُنْصَرُونَ ﴿١٦﴾ وَاَمَّا ثَمُودُ فَهَدَيْنَاهُمْ فَاسْتَحَبُّوا الْعَمٰى عَلَى الْهُدٰى
فَاَخَذَتْهُمْ صَاعِقَةُ الْعَذَابِ الْهُونِ بِمَا كَانُوا يَكْسِبُونَۚ ﴿١٧﴾
وَنَجَّيْنَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَكَانُوا يَتَّقُونَ۟ ﴿١٨﴾ وَيَوْمَ يُحْشَرُ اَعْدَٓاءُ
اللّٰهِ اِلَى النَّارِ فَهُمْ يُوزَعُونَ ﴿١٩﴾ حَتّٰٓى اِذَا مَا جَٓاؤُ۫هَا شَهِدَ عَلَيْهِمْ
سَمْعُهُمْ وَاَبْصَارُهُمْ وَجُلُودُهُمْ بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٢٠﴾

**12.** Di du rojan de wan wek heft esman xuliqand. Ji her (tebeqeya) esmanê re emrê xwe wehîy kir. Me esmana dinyayê bi qendîlan xemiland û (li dij şeytanan) parast. Ev, teqdîra (Allahê ku xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**13.** Eger rû vegerînin bibêje: “Ez, we bi birûskeke wekî birûska qewmê Ad û Semud hişyar dikim.”

**14.** Dema ku pêxember bi vê gotina “Bitenê îbadetê Allah bikin” li pêşîya wan û li dû wan hatin, wan wiha gotin: “Eger Rabbê me bixwestana (wek qasid) wê melaîketan daxistana. Bêguman em, tiştê ku hûn pê hatine şandin înkar dikin.”

**15.** Heçî qewmê Ad, li ser rûyê erdê bi neheqî quretîyê kirin û wiha gotin: “Ma ji me bi hêztir kî heye?” Ma qey nedîtin Allahê ku ew xuliqandine ji wan bi hêztir e. Wan, ayetên me înkar dikirin.

**16.** Me jî di jiyana dinyayê de ji bo ezabeke riswaker bitamînin di rojên bêyom/bêoxir de bahozekî/bagerekî bi ser wan de şand. Qet tu guman tune ku ezabê axîretê hêj zêdetir kêm dixîne û riswakertir e. Alîkarî jî ji wan re nayê kirin.

**17.** Heçî qewmê Semud, me ew hîdayet kirin. (Lê belê) wan korîtîyê/dalaletê li ser hîdayetê girtin. Di berdêla karûkirinên (masîyetên) wan de, ezaba riswaker ya birûskan ew zeft kirin.

**18.** Me ew ên îman anîne û (ji Allah) ditirsin û xwe diparêzin jî xelas kirin.

**19.** Roja dijminên Allah tên vejandin û li hevdu tên civandin, ew bi awayê di kontrolê de ber bi agir ve tên sewqkirin.

**20.** Dema ku ew têne wê derê, guhên wan û çavên wan û çermên wan der barê amelên (li ser xerabîyên) wan di aleyha wan de şahidîyê dikin.

وَقَالُوا لِجُلُودِهِمْ لِمَ شَهِدْتُمْ عَلَيْنَاۜ قَالُوٓا اَنْطَقَنَا اللّٰهُ الَّذٖٓى اَنْطَقَ
كُلَّ شَيْءٍ وَهُوَ خَلَقَكُمْ اَوَّلَ مَرَّةٍ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٢١﴾ وَمَا
كُنْتُمْ تَسْتَتِرُونَ اَنْ يَشْهَدَ عَلَيْكُمْ سَمْعُكُمْ وَلَٓا اَبْصَارُكُمْ
وَلَا جُلُودُكُمْ وَلٰكِنْ ظَنَنْتُمْ اَنَّ اللّٰهَ لَا يَعْلَمُ كَثٖيرًا مِمَّا تَعْمَلُونَ ﴿٢٢﴾
وَذٰلِكُمْ ظَنُّكُمُ الَّذٖى ظَنَنْتُمْ بِرَبِّكُمْ اَرْدٰيكُمْ فَاَصْبَحْتُمْ
مِنَ الْخَاسِرٖينَ ﴿٢٣﴾ فَاِنْ يَصْبِرُوا فَالنَّارُ مَثْوًى لَهُمْۚ وَاِنْ يَسْتَعْتِبُوا
فَمَا هُمْ مِنَ الْمُعْتَبٖينَ ﴿٢٤﴾ وَقَيَّضْنَا لَهُمْ قُرَنَٓاءَ فَزَيَّنُوا لَهُمْ
مَا بَيْنَ اَيْدٖيهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ وَحَقَّ عَلَيْهِمُ الْقَوْلُ فٖٓى اُمَمٍ قَدْ
خَلَتْ مِنْ قَبْلِهِمْ مِنَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِۚ اِنَّهُمْ كَانُوا خَاسِرٖينَ ﴿٢٥﴾
وَقَالَ الَّذٖينَ كَفَرُوا لَا تَسْمَعُوا لِهٰذَا الْقُرْاٰنِ وَالْغَوْا فٖيهِ
لَعَلَّكُمْ تَغْلِبُونَ ﴿٢٦﴾ فَلَنُذٖيقَنَّ الَّذٖينَ كَفَرُوا عَذَابًا شَدٖيدًا
وَلَنَجْزِيَنَّهُمْ اَسْوَاَ الَّذٖى كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٢٧﴾ ذٰلِكَ جَزَٓاءُ اَعْدَٓاءِ اللّٰهِ
النَّارُۚ لَهُمْ فٖيهَا دَارُ الْخُلْدِۜ جَزَٓاءً بِمَا كَانُوا بِاٰيَاتِنَا يَجْحَدُونَ ﴿٢٨﴾
وَقَالَ الَّذٖينَ كَفَرُوا رَبَّنَٓا اَرِنَا الَّذَيْنِ اَضَلَّانَا مِنَ الْجِنِّ
وَالْاِنْسِ نَجْعَلْهُمَا تَحْتَ اَقْدَامِنَا لِيَكُونَا مِنَ الْاَسْفَلٖينَ ﴿٢٩﴾

**21.** Ew ji çermên xwe re dibêjin: “We çima di aleyha me de şahidî kir?” Dibêjin: “Ew Allahê ku her tiştî dide axaftin em jî dane axaftin. Yê ku cara pêşîn hûn xuliqandin ew e û hûn ê bi bal wî ve bên vegerandin.”

**22.** We (dema îsyan dikir) xwe ji guhên xwe û çavên xwe û çermên xwe nediparast (û hûn tênedigihiştin) ku ew ê şahidî li ser we bidin. Lê belê (ya rast) we wiha zen dikir ku Allah bi piranîya wan tiştên ku we dikir ne agahdar e.

**23.** Ha ev zenna we ya ku we der barê Rabbê xwe de dikir, hûn birin helake. Bi vî awayî hûn bûne ji wan ên li ber xusranê ketine.

**24.** Eger bikaribin xwe ragirin, cihwarê wan agir e. Na, eger (dîsa li dinyayê bên vegerandin û) qayîlbûna xwe bivên, (qet tu daxwaza wan nayê cî) û nayên razîkirin jî.

**25.** Ji bo wan hevalên xerab çêkirin (ku bênavber bihevre ne). Tiştê li pêşîya wan (Bawerîya tunebûna axîretê) û ya li pişt wan (ramana ji heyata dinyayê pê ve tiştekî din tune) ji wan re xemilandî nîşan dan. Çawa ku (hukmê ezabê) li ser cin û însanên ji qewmên berê heq bibû, li ser van jî heq bû. Lewre ew, bûne ji wan ên li ber xusranê ketine.

**26.** Kafiran gotin: “Qur'anê guhdarî nekin û dema ew tê xwendin (ji bo fêm nebe) dengan derêxin. Hêvî heye ku hûn bi ser bikevin.”

(Qîreqîrkirina/deng deranîna dema xwendina Qur'anê, ji xusûsîyetên hevpar ên muşrîkan e. Ev teqereq û xirecirên li dij wehîyê, li gor dema û dera cudahî nîşan bide jî meqsed naguhere: Astengkirina însanan ji fêmkirina wehîyê û jîyîna pê. Ev, carinan bi êrîşkirina vexwîner û qutandina dengê wî pêk tê (41/Fussîlet, 26; 72/Cinn, 19), carinan bi bêbextîya li ser Qur'an (8/Enfâl, 31;16/Nahl, 103), carinan bi xwendina çîrok û çîvanokan dûr girtina gel ji Qur'anê (31/Luqman, 6), carinan ewarekirina gel bi wesîleyên wekî sêhr ku çavê însanan pê tê girêdan tê kirin. (7/A’râf, 113-116). Îro; muzîk û ekranên dîjîtal ên çavgirêdar û hunera ji dîn durketî û kevneşopa îdîa dike ku Qur'an nefêmbar e û rêbazên ku Qur'an wek tesdîqkarê serdema modern dipejirînin û desthilatên daxwaz dikin ku dengê vexwînerên wehîyê qut bikin, ev hemû, îro mînakên ji bo astengîya fêmkirina Qur'anê re xirecir û teqereqa ku tên kirin in.

**27.** Bêguman, em ê ezabekî dijwar bi kafiran bitamînin û wan bi kirinên xwe yên herî xerab ceza bikin.

**28.** Ha ev agir, cezayê dijminên Allah e. Ji ber ku ayetên me înkar kirine, ji wan re wek ceza warekî ku wê tê de ebedî bimînin heye.

**29.** Kafir dibêjin: “Rabbê me! Ji cin û însanan ew ên ku me xerifandine nîşanî me bide. Ji bo ku bibin ji wan ên herî kêmxistî/riswaker em ê wan binpê bikin.

اِنَّ الَّذٖينَ قَالُوا رَبُّنَا اللّٰهُ ثُمَّ اسْتَقَامُوا تَتَنَزَّلُ عَلَيْهِمُ
الْمَلٰٓئِكَةُ اَلَّا تَخَافُوا وَلَا تَحْزَنُوا وَاَبْشِرُوا بِالْجَنَّةِ
الَّتٖى كُنْتُمْ تُوعَدُونَ ﴿٣٠﴾ نَحْنُ اَوْلِيَٓاؤُكُمْ
فِى الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَفِى الْاٰخِرَةِۚ وَلَكُمْ فٖيهَا مَا تَشْتَهٖٓى
اَنْفُسُكُمْ وَلَكُمْ فٖيهَا مَا تَدَّعُونَۜ ﴿٣١﴾ نُزُلًا مِنْ غَفُورٍ
رَحٖيمٍۚ ﴿٣٢﴾ وَمَنْ اَحْسَنُ قَوْلًا مِمَّنْ دَعَٓا اِلَى اللّٰهِ وَعَمِلَ
صَالِحًا وَقَالَ اِنَّنٖى مِنَ الْمُسْلِمٖينَ ﴿٣٣﴾ وَلَا تَسْتَوِى الْحَسَنَةُ
وَلَا السَّيِّئَةُۜ اِدْفَعْ بِالَّتٖى هِىَ اَحْسَنُ فَاِذَا الَّذٖى بَيْنَكَ
وَبَيْنَهُ عَدَاوَةٌ كَاَنَّهُ وَلِىٌّ حَمٖيمٌ ﴿٣٤﴾ وَمَا يُلَقّٰيهَٓا
اِلَّا الَّذٖينَ صَبَرُواۚ وَمَا يُلَقّٰيهَٓا اِلَّا ذُو حَظٍّ عَظٖيمٍ ﴿٣٥﴾
وَاِمَّا يَنْزَغَنَّكَ مِنَ الشَّيْطَانِ نَزْغٌ فَاسْتَعِذْ بِاللّٰهِۜ اِنَّهُ هُوَ
السَّمٖيعُ الْعَلٖيمُ ﴿٣٦﴾ وَمِنْ اٰيَاتِهِ الَّيْلُ وَالنَّهَارُ وَالشَّمْسُ وَالْقَمَرُۜ
لَا تَسْجُدُوا لِلشَّمْسِ وَلَا لِلْقَمَرِ وَاسْجُدُوا لِلّٰهِ الَّذٖى خَلَقَهُنَّ
اِنْ كُنْتُمْ اِيَّاهُ تَعْبُدُونَ ﴿٣٧﴾ فَاِنِ اسْتَكْبَرُوا فَالَّذٖينَ عِنْدَ
رَبِّكَ يُسَبِّحُونَ لَهُ بِالَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَهُمْ لَا يَسْـَٔمُونَ ﴿٣٨﴾

**30.** Bêguman ew ên dibêjin: “Rabbê me Allah e” û paşê li ser îstîqametê ne, di ser wan de melaîket dadikevin (û dibêjin): “Netirsin, xemgîn jî nebin û bi wê cenneta ku li we hatîye weadkirin re kêfxweş bibin.”

**31.** “Em di jiyana dinyayê de jî û li axîretê jî dostên we ne. Li wê derê dilê we her çi bixwaze ji we re ye û hûn li wê derê her çi daxwaz bikin jî yê we ye.”




**32.** “Wek ezimandineke/îkrameke ji (Allahê) Xafûr û Rahîm (bikevin wê derê).”

**33.** Ji wî yê ku bi bal Allah ve gazî dike/vedixwîne û amelê salih dike û dibêje: “Ez ji muslîman im/ji evdên ku şirkê terk kirine û berê xwe bi tewhîdê dane Allah (yek ji wan) im.” gotinxweştir kî heye?

(Ji bo taybetîyên daweta îslamê bnr. 12/Yûsuf, 108.)

**34.** Qencî û xerabî nabin weke hev. Tu (xerabîyê) bi awayekî xweşik def bike/biqewirîne. Wê demê tu yê bibînî ku ew kesê di navbera te û wî de dijminantî heye ji te re bûye dostekî dilgerm/dilsoz.

(Bnr. 4/Nîsa, 148)

**35.** Ji wan ew ên sebirvan pê ve tu kesekî din nagihîje vê (exlâqê/mezîyetê). Ji xeynî kesên ku (ji xêrê) xwedî pareke mezin in pê ve kes nagihîje vê (exlâqê/mezîyetê).

**36.** Eger ji şeytan niçkek/weweseyek ji te re were, xwe bispêre Allah. Bêguman ew, (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**37.** Şev û roj, Tav (roj) û hîv jî ji ayetên Allah in. Eger hûn bitenê îbadetê wî dikin ji roj û hîvê re secde nekin. Ji Allahê xaliqê wan re secde bikin.

**38.** Eger xwe qure bikin (û nêzî secdekirina ji Allah re nebin), ew (melaîket) ên li cem Rabbê te wî bi şev û roj tesbîh dikin û aciz nabin/nakerixin.

وَمِنْ اٰيَاتِه۪ٓ اَنَّكَ تَرَى الْاَرْضَ خَاشِعَةً فَاِذَٓا اَنْزَلْنَا عَلَيْهَا الْمَٓاءَ
اهْتَزَّتْ وَرَبَتْۜ اِنَّ الَّذ۪ٓي اَحْيَاهَا لَمُحْيِ الْمَوْتٰىۜ اِنَّهُ عَلٰى كُلِّ
شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿٣٩﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يُلْحِدُونَ ف۪ٓي اٰيَاتِنَا لَا يَخْفَوْنَ عَلَيْنَاۜ
اَفَمَنْ يُلْقٰى فِي النَّارِ خَيْرٌ اَمْ مَنْ يَأْت۪ٓي اٰمِنًا يَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ اِعْمَلُوا
مَا شِئْتُمْۙ اِنَّهُ بِمَا تَعْمَلُونَ بَص۪يرٌ ﴿٤٠﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا بِالذِّكْرِ
لَمَّا جَٓاءَهُمْۚ وَاِنَّهُ لَكِتَابٌ عَز۪يزٌۙ ﴿٤١﴾ لَا يَأْت۪يهِ الْبَاطِلُ
مِنْ بَيْنِ يَدَيْهِ وَلَا مِنْ خَلْفِه۪ۜ تَنْز۪يلٌ مِنْ حَك۪يمٍ حَم۪يدٍ ﴿٤٢﴾
مَا يُقَالُ لَكَ اِلَّا مَا قَدْ ق۪يلَ لِلرُّسُلِ مِنْ قَبْلِكَۜ اِنَّ رَبَّكَ
لَذُو مَغْفِرَةٍ وَذُو عِقَابٍ اَل۪يمٍ ﴿٤٣﴾ وَلَوْ جَعَلْنَاهُ قُرْاٰنًا اَعْجَمِيًّا
لَقَالُوا لَوْلَا فُصِّلَتْ اٰيَاتُهُۜ ءَاَعْجَمِيٌّ وَعَرَبِيٌّۜ قُلْ هُوَ لِلَّذ۪ينَ
اٰمَنُوا هُدًى وَشِفَٓاءٌۜ وَالَّذ۪ينَ لَا يُؤْمِنُونَ ف۪ٓي اٰذَانِهِمْ وَقْرٌ وَهُوَ
عَلَيْهِمْ عَمًىۜ اُو۬لٰٓئِكَ يُنَادَوْنَ مِنْ مَكَانٍ بَع۪يدٍ ﴿٤٤﴾ وَلَقَدْ
اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ فَاخْتُلِفَ ف۪يهِۜ وَلَوْلَا كَلِمَةٌ سَبَقَتْ
مِنْ رَبِّكَ لَقُضِيَ بَيْنَهُمْۜ وَاِنَّهُمْ لَف۪ي شَكٍّ مِنْهُ مُر۪يبٍ ﴿٤٥﴾ مَنْ عَمِلَ
صَالِحًا فَلِنَفْسِه۪ وَمَنْ اَسَٓاءَ فَعَلَيْهَاۜ وَمَا رَبُّكَ بِظَلَّامٍ لِلْعَب۪يدِ ﴿٤٦﴾

**39.** Ji ayetên wî yek jî (ev e): Tu, ser rûyê erdê hişkeber/şorak/bêlebat dibînî. Dema ku em li ser wê avê/baranê dadixînin dilebite û hildipeke. Bêguman ew ê heyat dide (wê erda hişkeber), helbet wê mirîyan jî bivejîne/sax bike. Lewre ew qadirê her tiştî ye.

**40.** Ew ên der heqê ayetên me de meyldarî (ya batilê) dikin, ji me re veşartî namînin. Erê ma ew ê ku bi nava agir ve wê bê avêtin bixêrtir e an ew ê roja qiyametê bi ewlehî tê (bixêrtir e)? Hûn çi divên wê bikin. Bêşik ew, karûkirinên we dibîne.

**41.** Bêguman, dema ji wan re Zikir/Qur'an hat û wê înkar kirine (dê berdêla van helwestên xwe bibînin). Hal ev e ku ew, Kitêbeke bi îzzet/bi şeref/bi rûmet e.

**42.** Ne ji pêş ve û ne ji paş ve batil nikare nêzî wê bibe. Ji hêla/ji alîyê (Allahê ku xwedî hikum û hikmet) Hakîm û (yê ku herî zêde hemd û pesinandinê heq dike û ji alîyê heyînan ve tê pesinandin) Hamîd ve hatîye daxistin.

**43.** Tiştên ji te re têne gotin, ji wan ên ji pêxemberên berê re hatine gotin pê ve ne tiştekî din in. Bêguman Rabbê te xwedî mexfîret û xwedîyê ezaba biêş û jan e.

**44.** Eger me ew Qur'an li ser zimanekî ne Erebî daxistana wê wiha bigotana: “Ma ne pêwist/ne hewce bû ku ayetên wê bihata ravekirin? Kitêbeke Erebî û (pêxemberekî) Ereb!” Bibêje: “Ew, ji bo ew ên îman anîne re hîdayet û şîfa ye. Di guhên wan ên îman neanîne de jî giranî heye û ew (Qur'an) ji bo wan korîtî ye. Ha ew ên hanê, wekî wan (însanan) in ku ji ciheke dûr tên gazîkirin (Qur'anê nabihîzin û fêm nakin).”

**45.** Sond be, me Kitêb da Mûsa. Li ser wê ketin îxtîlafê. Eger ji Rabbê te sozêke di berê de nebûya, helbet wê der heqê wan de hukim bihata dayîn. Bêguman ew, (li dij Kitêbê) di nava gumanekî de ne ku bêaramîtî dide wan.

**46.** Her kî amelê salih bike, ew di leha wî de ye/jê re baş e. Kî jî xerabî bike, di aleyha wî de ye. Rabbê te li ser evdên xwe ne zilimkar e.




اِلَيْهِ يُرَدُّ عِلْمُ السَّاعَةِ وَمَا تَخْرُجُ مِنْ ثَمَرَاتٍ مِنْ اَكْمَامِهَا
وَمَا تَحْمِلُ مِنْ اُنْثٰى وَلَا تَضَعُ اِلَّا بِعِلْمِهِ وَيَوْمَ يُنَادٖيهِمْ اَيْنَ
شُرَكَٓائٖي قَالُٓوا اٰذَنَّاكَ مَا مِنَّا مِنْ شَهٖيدٍ ﴿٤٧﴾ وَضَلَّ عَنْهُمْ
مَا كَانُوا يَدْعُونَ مِنْ قَبْلُ وَظَنُّوا مَا لَهُمْ مِنْ مَحٖيصٍ ﴿٤٨﴾
لَا يَسْـَٔمُ الْاِنْسَانُ مِنْ دُعَٓاءِ الْخَيْرِ وَاِنْ مَسَّهُ الشَّرُّ فَيَؤُ۫سٌ
قَنُوطٌ ﴿٤٩﴾ وَلَئِنْ اَذَقْنَاهُ رَحْمَةً مِنَّا مِنْ بَعْدِ ضَرَّٓاءَ مَسَّتْهُ
لَيَقُولَنَّ هٰذَا لٖي وَمَٓا اَظُنُّ السَّاعَةَ قَٓائِمَةً وَلَئِنْ رُجِعْتُ
اِلٰى رَبّٖٓي اِنَّ لٖي عِنْدَهُ لَلْحُسْنٰى فَلَنُنَبِّئَنَّ الَّذٖينَ كَفَرُوا
بِمَا عَمِلُوا وَلَنُذٖيقَنَّهُمْ مِنْ عَذَابٍ غَلٖيظٍ ﴿٥٠﴾ وَاِذَٓا اَنْعَمْنَا
عَلَى الْاِنْسَانِ اَعْرَضَ وَنَاٰ بِجَانِبِهٖ وَاِذَا مَسَّهُ الشَّرُّ فَذُو دُعَٓاءٍ
عَرٖيضٍ ﴿٥١﴾ قُلْ اَرَاَيْتُمْ اِنْ كَانَ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ ثُمَّ كَفَرْتُمْ
بِهٖ مَنْ اَضَلُّ مِمَّنْ هُوَ فٖي شِقَاقٍ بَعٖيدٍ ﴿٥٢﴾ سَنُرٖيهِمْ اٰيَاتِنَا
فِي الْاٰفَاقِ وَفٖٓي اَنْفُسِهِمْ حَتّٰى يَتَبَيَّنَ لَهُمْ اَنَّهُ الْحَقُّ
اَوَلَمْ يَكْفِ بِرَبِّكَ اَنَّهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ شَهٖيدٌ ﴿٥٣﴾ اَلَٓا اِنَّهُمْ
فٖي مِرْيَةٍ مِنْ لِقَٓاءِ رَبِّهِمْ اَلَٓا اِنَّهُ بِكُلِّ شَيْءٍ مُحٖيطٌ ﴿٥٤﴾

**47.** Agahîya qiyametê bi bal Allah ve tê sipartin/hewaleyê wî ye. Beyî ilma wî fêkî ji bûtika xwe/ji gulpika xwe dernakeve. Qet tu jin hamîle namîne û nawelidîne/zarok nayne. Wê roja ku (Allah) wiha gazî wan dike: "Ka, li ku ne ew şirîkên min?" wê wiha bibêjin: "Em ji te re îlân dikin û radigihînin ku (li ser hebûna şirîkên te) kesekî ji me ku şahidî bike tune."

**48.** Ew tiştên ku berê de ji wan re dûa dikirin bitevahî winda bûn, çûn. Û wan bi agahîyeke qethî fêm kir ku ji wan re cihê revê jî tune.

**49.** Însan, ji daxwazîya xêrê qet naweste/nabetile. (Lê belê) dema ku serwerîya bi ser de bê hema hêvîya xwe winda dike û bê umîd dimîne.

**50.** Eger zerarek bi ser wî de bê û paşê em rahmetekê ji cem xwe bi wî bitamînin muheqeq wê bibêje: "Ev (heq) ê min e û ez ne bawer im ku qiyamet jî rabe. Eger ez bi bal Rabbê xwe ve bêm vegerandin jî li cem wî ji bo min ya herî xweşiktir heye." Sond be ku em ê kafiran bi karûkirinên wan agahdar bikin û dîsa sond be ku em ê ezabê herî giran/dijwar bi wan bitamînin.

**51.** Dema ku em nîmetek didin însan (ji şikirdarîyê) rû vedigerîne û (şûna ku ji bo nîmetê şikur bike ji me) dûr dibe. Dema ku şerek pê bigire jî dest bi dûayên duvedirêj dike.

**52.** Bibêje: "Fikrê we/ramana we çî ye? (Ka bibêjin! Eger ew Qur'an) ji îndallah be û paşê we ew înkar kiribe! (Di vê rewşê de) ji wî kesî ku di nav cihêbûneke dûr de ye xerifîtir kî heye?"

**53.** Em ê ayetên xwe hem di ufûqê de hem jî di nefsa wan de nîşanî wan bidin da ku bi awayekî teqez ji wan re diyar bibe ku ew (Qur'an) heq e. Şahidbûna Rabbê te ya li ser her tiştî ne bes e?

**54.** Baldar bin/Dîqat bikin! Bêguman ew, ji leqayîhatina Rabbê xwe di şubhê de ne. Dîqat bikin! Bêguman ew (Allah), yê ku her tiştî (hawîrdor zeft kiriye) Muhît e.

سُورَةُ الشُّورٰى
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَلَاثٌ وَخَمْسُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

حٰمٓ ﴿١﴾ عٓسٓقٓ ﴿٢﴾ كَذٰلِكَ يُوح۪ٓي اِلَيْكَ وَاِلَى الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِكَۙ
اللّٰهُ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُ ﴿٣﴾ لَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِۜ وَهُوَ
الْعَلِيُّ الْعَظ۪يمُ ﴿٤﴾ تَكَادُ السَّمٰوَاتُ يَتَفَطَّرْنَ مِنْ فَوْقِهِنَّ
وَالْمَلٰٓئِكَةُ يُسَبِّحُونَ بِحَمْدِ رَبِّهِمْ وَيَسْتَغْفِرُونَ لِمَنْ فِي الْاَرْضِۜ
اَلَٓا اِنَّ اللّٰهَ هُوَ الْغَفُورُ الرَّح۪يمُ ﴿٥﴾ وَالَّذ۪ينَ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِه۪ٓ اَوْلِيَٓاءَ
اللّٰهُ حَف۪يظٌ عَلَيْهِمْۘ وَمَٓا اَنْتَ عَلَيْهِمْ بِوَك۪يلٍ ﴿٦﴾ وَكَذٰلِكَ اَوْحَيْنَٓا اِلَيْكَ
قُرْاٰناً عَرَبِياًّ لِتُنْذِرَ اُمَّ الْقُرٰى وَمَنْ حَوْلَهَا وَتُنْذِرَ يَوْمَ الْجَمْعِ
لَا رَيْبَ ف۪يهِۜ فَر۪يقٌ فِي الْجَنَّةِ وَفَر۪يقٌ فِي السَّع۪يرِ ﴿٧﴾ وَلَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ لَجَعَلَهُمْ
اُمَّةً وَاحِدَةً وَلٰكِنْ يُدْخِلُ مَنْ يَشَٓاءُ ف۪ي رَحْمَتِه۪ۜ وَالظَّالِمُونَ مَا لَهُمْ
مِنْ وَلِيٍّ وَلَا نَص۪يرٍ ﴿٨﴾ اَمِ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِه۪ٓ اَوْلِيَٓاءَۚ فَاللّٰهُ هُوَ الْوَلِيُّ
وَهُوَ يُحْيِ الْمَوْتٰىۘ وَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿٩﴾ وَمَا اخْتَلَفْتُمْ ف۪يهِ
مِنْ شَيْءٍ فَحُكْمُهُٓ اِلَى اللّٰهِۜ ذٰلِكُمُ اللّٰهُ رَبّ۪ي عَلَيْهِ تَوَكَّلْتُۗ وَاِلَيْهِ اُن۪يبُ ﴿١٠﴾

## 42. SÛREYA ŞÛRÂ

*(Sûreya Şûrâ, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pêncî û sê (53) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya çil û duyemîn e. Sûreya Şûrâ, navê xwe ji ayeta 38. sitendîye. Di vê ayetê de peyva Şûrâ dibore û behsa ji bo hemû muslîman di her mijarî de divê ku di navbera xwe de bi şêwr tevbigerin dike. Temasa mijara wehîyê dike. Pey re li ser aîdîyeta rêveberîya wî ya mutleq û serwerîya Allah (ac) ya di erd û esmanan de disekine. Bal li ser vê mijarê dikişîne ku Qur'an bi zimanê Erebî ye û teqez berhema wehîyê ye. Ligel vê, emrê vexwendina aqîdeya tewhîdê li Rasûlullah (ass) tê kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Hâ, Mîm.

**2.** Ayn, Sîn, Qâf.

**3.** Ew Allahê (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm, ji te re û ji (pêxember) ên berî te re bi vî awayî wehîy dike.

**4.** Tiştên li erd û esmanan bi tevahî aîdê Allah in. Û ew, (bi zat û sifetên xwe pir bilind) Alîy û (bi zat û sifetên xwe pir mezin) Azîm e.

**5.** Hema mabû ku esman (ji ber ezameta Allah) biqelişe. Melaîket jî Rabbê xwe bi hemd tesbîh dikin û ji bo yên li erdê re mexfîret daxwaz dikin. Baldar bin/Dîqat bikin! Bêguman Allah, (belê) ew, Bêguman Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên we pir bi merhamet) Rahîm e.

**6.** Ew ên dev ji Allah berdane û ji xwe re dostên din girtine (hene!) Allah li ser wan çavnêr e. Tu li ser wan ne wekîl î.

(Li ser mijara dost û welî girtina heyînên ji xeynî Allah bnr. 6/En'am, 14; 29/ Ankebût, 41)

**7.** Herwiha ji bo ku tu Ummu'l Qurâ/Dêya Bajaran (Mekke) û hawîrdorê wê hişyar bikî û (însanan) bi wê Roja Civînê hişyar bikî me ji te re Qur'aneke Erebî wehîy kir. (Roja Qiyametê) komek li cennetê ye û komek jî di nav agirê ku alavên bi erjeng/bi dehşet direşîne de ne.

**8.** Eger Allah bixwesta, wê wan bikira yek ummetek. Lê ew kîjanî bixwaze daxilê rahmeta xwe dike. Heçî ji bo zilimkaran ne tu dostek û ne jî alîkarek heye.

**9.** Nexwe, ji xeynî Allah dostan/welîyan girtin? Dostê/Welîyê heqîqî Allah e. Ew, mirîyan vedijîne. Ew, qadirê her tiştî ye.

(Li ser mijara dost û welî girtina heyînên ji xeynî Allah bnr. 6/En'am, 14; 29/ Ankebût, 41)

**10.** Hûn di her kîjan mijarê de îxtîlaf bikin, (di wê mijarê de) hukim aîdê Allah e. Rabbê min Allah ev e. Ez bitenê tewekkulê wî dikim û bitenê berê xwe didim wî.

(Bnr. 4/Nîsa, 59; 12/Yûsuf, 40)

فَاطِرُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ جَعَلَ لَكُمْ مِنْ اَنْفُسِكُمْ اَزْوَاجًا
وَمِنَ الْاَنْعَامِ اَزْوَاجًاۚ يَذْرَؤُ۬كُمْ فِيهِۜ لَيْسَ كَمِثْلِهٖ شَيْءٌۚ
وَهُوَ السَّمِيعُ الْبَصِيرُ ﴿١١﴾ لَهُ مَقَالِيدُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۚ
يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَٓاءُ وَيَقْدِرُۜ اِنَّهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمٌ ﴿١٢﴾
شَرَعَ لَكُمْ مِنَ الدِّينِ مَا وَصّٰى بِهٖ نُوحًا وَالَّذٖٓي اَوْحَيْنَٓا اِلَيْكَ
وَمَا وَصَّيْنَا بِهٖٓ اِبْرٰهِيمَ وَمُوسٰى وَعِيسٰٓى اَنْ اَقِيمُوا الدِّينَ
وَلَا تَتَفَرَّقُوا فِيهِۜ كَبُرَ عَلَى الْمُشْرِكِينَ مَا تَدْعُوهُمْ
اِلَيْهِۜ اَللّٰهُ يَجْتَبٖٓي اِلَيْهِ مَنْ يَشَٓاءُ وَيَهْدٖٓي اِلَيْهِ مَنْ يُنِيبُ ﴿١٣﴾
وَمَا تَفَرَّقُٓوا اِلَّا مِنْ بَعْدِ مَا جَٓاءَهُمُ الْعِلْمُ بَغْيًا بَيْنَهُمْۜ
وَلَوْلَا كَلِمَةٌ سَبَقَتْ مِنْ رَبِّكَ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّى لَقُضِيَ بَيْنَهُمْۜ
وَاِنَّ الَّذِينَ اُو۫رِثُوا الْكِتَابَ مِنْ بَعْدِهِمْ لَفٖي شَكٍّ مِنْهُ
مُرِيبٍ ﴿١٤﴾ فَلِذٰلِكَ فَادْعُۚ وَاسْتَقِمْ كَمَٓا اُمِرْتَۚ وَلَا تَتَّبِعْ
اَهْوَٓاءَهُمْۚ وَقُلْ اٰمَنْتُ بِمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ مِنْ كِتَابٍۚ وَاُمِرْتُ لِاَعْدِلَ
بَيْنَكُمْۜ اَللّٰهُ رَبُّنَا وَرَبُّكُمْۜ لَنَٓا اَعْمَالُنَا وَلَكُمْ اَعْمَالُكُمْۜ
لَا حُجَّةَ بَيْنَنَا وَبَيْنَكُمْۜ اَللّٰهُ يَجْمَعُ بَيْنَنَاۚ وَاِلَيْهِ الْمَصِيرُۜ ﴿١٥﴾

**11.** Xaliqê erd û esmanan e. Ji nefsên we bixwe ji we re hevjînan xuliqand. Ji dewaran jî cot bi cot xuliqandîye. We (bi vî awayî, bi xuliqandina wek mêr û jin) zêde dike û belav dike. Qet tu tiştjê re ne heval/menend/himkûf e. Ew, (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e.

(Qaîdeyên felsefeyê ya ku li ser zen û hewayê ava ne û ji nûra wehîyê dûr in mixabin sîrayetê îlmên îslâmî kiriye û di nav ummeta îslâmê de tesewura Allah (ac) jî îfsad kiriye. Gelek firqe xwe lê didin ku bi ayeta “Qet tu tişt jê re ne heval/menend/hinkûf e.” pir sifetên Allah (ac) tewîl/texrîf/înkar bikin. Digel ku xwe ji teşbîhê (şibandina Allah bi evdên wî) dûr bikin, noqî texrîf û înkarê bûne ku ev rewş ji hêla îtîqadê ve pirsgirêkeke herî mezintir e. Allah (ac) piştî radigihîne ku qet tu tişt naşibe wî û nabe menend û himkûfê wî; wiha dibêje: “Ew, Semî û Basîr e.” Li ser vêya em bibêjin: “Di însan de sifeta dîtinê heye. Allah jî dibîne.” û vê ayetê li ser maneya zahir binirxînin dibe ku em Allah (ac) bişibînin însan. An jî berpêbûyîna/helwesta ku “ji bo dîtinê çav hewce ne. Allah jî dibîne, wek binavgîn/neyekser wekî ku mirov bibêje organê wî heye” her çiqas abes û ji heqîqetê dûr be; sifetên weke îstîwa û dest ku di Qur'an û sunneta sehîh de sabit in bi hincetên mînahev ji bo dûrketina ji teşbîhê înkarkirina van jî ewqas abes e û ji heqîqetê dûr e. Lewre sifetên Allah (ac), bi awayekî wisan e ku layiqê şan û ezamet û berzbûn û bê menendîya wî ye. Em îman bi tiştên ku wî (ac) em agahdar kirine tînin û bi jêpirsînên aqlî der heqê keyfîyeta sifetên wî de bi aqil şixulandinê qethîyên em xwe li rêya înkarê nadin. Der heqê nav û sifetên Allah (ac) de bnr. 3/Âl-î Îmran, 181; 7/A'râf, 180; 57/Hadîd, 4)

**12.** Miftên/enextarên (xezîneyên) erd û esmanan yên wî ne. Ew ji kî re bixwaze rizqê wî fireh dike û (ji kî re jî bixwaze rizqê wî) teng dike. Lewre ew, zanayê her tiştî ye.

**13.** Ji bo ku hûn dîn (bi tewhîdê) li ser pîyan bigirin û hûn tê de nekevin îxtîlafê tiştê ji Nûh re emir kiriye û ya ku me li te wehîy kiriye û ya ku me li Îbrahîm û li Mûsa û li Îsa emir kiriye me ji bo we kir şerîet. Lê ew (tewhîd) a tu wan gazî dikî ji muşrîkan re giran hat. Allah kîjan evdê xwe bixwaze (ji bo tewhîdê û dîneke yekpare) hildibijêre û wan ên ku berê xwe didine wî, digihîjîne hîdayetê.

**14.** Ew piştî ku ilim ji wan re hat, ji ber ji harîtî/hesûdî/çavnebarîya xwe, di navbera xwe de ketin îxtîlafê. Eger heta demeke diyarkirî ew ehda ku Rabbê te dabû nebûya, wê di navbera wan de hukim bihata vebirîn. Bêguman ew ên di pey wan de ji Kitêbê re bibûn waris, di nava gumanekî de ne ku bêaramîtî dide wan.

**15.** Tu (bi bal tewhîdê ve) bivexwîne/dawet bike. Wekî ku tu pê hatî fermankirin rasterast be. Nebe tabiê hewayên/hewesên wan. Û bibêje: “Min, bi her Kitêba ku Allah daxistîye îman anî. Ez di navbera we de bi (hukimdayîna li ser) edaletê hatime emirkirin. Allah, Rabbê me û Rabbê we ye jî. Amelên me ji me re û amelên we jî ji we re ne. Di navbera me û we de huccet (delîl anîna wek bi berhemberî û nîqaş) nîne. (Lewre heq, vikîvekirî li holê ye.) Allah, wê me hemûyan li cem hev bicivîne. Veger jê re ye.

(Di civakên ku şirk tevlî tewhîda xwe kirine û di dînê xwe de ketine cihêtîyê de, ji bo însanîyetê xizmeta herî sûdmend dûrketina ji nîqaşên bêker û daweta/vexwendina tewhîdê ye. Tewhîd; ji wan nexweşînên weke guman û teredût/dudilî û bêewlehî ku dînê batil û xurafeyên hatine li hev anîn re reçeteya xelasîyê ye ku wê bibe şîfa. Di dewreke ku ehlê kitêb bi “cihêtîya dîn de” însanan bi bal Feleqetê ve dikişkişîne de, menkirina nîqaşên vala û emirkirina vexwendina/daweta tewhîdê rê nîşanî muwahhîdên îro dide.)

وَالَّذِينَ يُحَاجُّونَ فِي اللّٰهِ مِنْ بَعْدِ مَا اسْتُجِيبَ لَهُ
حُجَّتُهُمْ دَاحِضَةٌ عِنْدَ رَبِّهِمْ وَعَلَيْهِمْ غَضَبٌ وَلَهُمْ عَذَابٌ
شَدِيدٌ ﴿١٦﴾ اَللّٰهُ الَّذِي اَنْزَلَ الْكِتَابَ بِالْحَقِّ وَالْمِيزَانَ
وَمَا يُدْرِيكَ لَعَلَّ السَّاعَةَ قَرِيبٌ ﴿١٧﴾ يَسْتَعْجِلُ بِهَا
الَّذِينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِهَا وَالَّذِينَ اٰمَنُوا مُشْفِقُونَ مِنْهَا
وَيَعْلَمُونَ اَنَّهَا الْحَقُّ اَلَا اِنَّ الَّذِينَ يُمَارُونَ فِي السَّاعَةِ
لَفِي ضَلَالٍ بَعِيدٍ ﴿١٨﴾ اَللّٰهُ لَطِيفٌ بِعِبَادِهِ يَرْزُقُ مَنْ يَشَاءُ
وَهُوَ الْقَوِيُّ الْعَزِيزُ ﴿١٩﴾ مَنْ كَانَ يُرِيدُ حَرْثَ الْاٰخِرَةِ
نَزِدْ لَهُ فِي حَرْثِهِ وَمَنْ كَانَ يُرِيدُ حَرْثَ الدُّنْيَا نُؤْتِهِ مِنْهَا
وَمَا لَهُ فِي الْاٰخِرَةِ مِنْ نَصِيبٍ ﴿٢٠﴾ اَمْ لَهُمْ شُرَكَاءُ شَرَعُوا
لَهُمْ مِنَ الدِّينِ مَا لَمْ يَأْذَنْ بِهِ اللّٰهُ وَلَوْلَا كَلِمَةُ الْفَصْلِ
لَقُضِيَ بَيْنَهُمْ وَاِنَّ الظَّالِمِينَ لَهُمْ عَذَابٌ اَلِيمٌ ﴿٢١﴾ تَرَى
الظَّالِمِينَ مُشْفِقِينَ مِمَّا كَسَبُوا وَهُوَ وَاقِعٌ بِهِمْ
وَالَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ فِي رَوْضَاتِ الْجَنَّاتِ لَهُمْ
مَا يَشَاؤُنَ عِنْدَ رَبِّهِمْ ذٰلِكَ هُوَ الْفَضْلُ الْكَبِيرُ ﴿٢٢﴾

**16.** Piştî ku îcabet (li gazîkirina Allah) hate kirin, delîlên wan kesên ku der heqê Allah de nîqaş dikin li cem Rabbê wan betal e. Li ser wan xezeb heye û ji wan re ezabekî dijwar heye.

**17.** (Ew) Allah e ku; Kitêb û mîzan bi heqî daxistîye. Tu ji ku derê dizanî, belkî jî saet/qiyamet nêz e.

**18.** Ew ên pê îman naynin, dixwazin ku ew bi lez were. Heçî yên îman anîne ji ber wê bitirs in û dizanin ku ew heq e. Baldar bin/Dîqat bikin! Bêguman ew ên der heqê qiyametê de nîqaş dikin di nava xerifîyeke dûr (ku vegera wî ya bi heqê ve pir zor) de ne.

**19.** Allah, li ser evdên xwe latîf e. Ji kî re bixwaze wî dirizqîne. Ew, (yê xwedî hêz û quwwet) Qawiy û (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz e.

**20.** Kî qezenca/xêra axîretê bixwaze (bi amelê xwe xêra axîretê daxwaz bike) em qezenca wî/xêra wî zêde dikin. Kî jî qezenca dinyayê bixwaze (bi amelê xwe xemla dinyayê daxwaz bike), em jî ji wê didin wî. (Lê belê,) li axîretê qet tu nesîbê wî tune.

**21.** Nexwe, hinek şirîkên wan hene ku tiştên Allah destûr nedaye ji xwe re kirine şerîet/qanûn? Eger (li ser paşvexistina/texîrkirina ezaba wan heta qiyametê) ehdeke qethî nebûya, helbet wê di navbera wan de hukim bihata vebirîn. Bêguman ji zilimkaran re ezabekî biêş û jan heye.

(Ew ên tiştê ku Allah destûr nedaye dikin şerîet, heram wekî helal û qedexe jî wekî serbest dikin qanûn, evana şirîkên ku ji Allah (ac) re tên çêkirin in. Lewre qanûnçêkerî û diyarkirina şerîet û zagondanîn ji sifetên Allah (ac) ya herî xuyaye ne. (Bnr. 12/Yûsuf, 40; 18/Kehf, 26))

**22.** Tu yê bibînî ku ew ên zilimkar ji sedema (kufr û masîyeta) ku bi dest xistine, bi tirsê ketine. Ew (ezaba ku jê ditirsin) hatîye serê wan. Heçî ew ên îman anîne û amelê salih kirine jî li bexçeyên cennetê de ne. Li cem Rabbê wan, ji wan re hemû tiştên ku daxwaz dikin heye. Ha lutf û îhsana mezin ev e.

ذٰلِكَ الَّذ۪ي يُبَشِّرُ اللّٰهُ عِبَادَهُ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِۜ قُلْ
لَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ اَجْرًا اِلَّا الْمَوَدَّةَ فِي الْقُرْبٰىۜ وَمَنْ يَقْتَرِفْ
حَسَنَةً نَزِدْ لَهُ ف۪يهَا حُسْنًاۜ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ شَكُورٌ ﴿٢٣﴾ اَمْ يَقُولُونَ
افْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًاۚ فَاِنْ يَشَاِ اللّٰهُ يَخْتِمْ عَلٰى قَلْبِكَۜ وَيَمْحُ اللّٰهُ
الْبَاطِلَ وَيُحِقُّ الْحَقَّ بِكَلِمَاتِه۪ۜ اِنَّهُ عَل۪يمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٢٤﴾
وَهُوَ الَّذ۪ي يَقْبَلُ التَّوْبَةَ عَنْ عِبَادِه۪ وَيَعْفُوا عَنِ السَّيِّـَٔاتِ وَيَعْلَمُ
مَا تَفْعَلُونَۙ ﴿٢٥﴾ وَيَسْتَج۪يبُ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
وَيَز۪يدُهُمْ مِنْ فَضْلِه۪ۜ وَالْكَافِرُونَ لَهُمْ عَذَابٌ شَد۪يدٌ ﴿٢٦﴾
وَلَوْ بَسَطَ اللّٰهُ الرِّزْقَ لِعِبَادِه۪ لَبَغَوْا فِي الْاَرْضِ وَلٰكِنْ يُنَزِّلُ
بِقَدَرٍ مَا يَشَٓاءُۜ اِنَّهُ بِعِبَادِه۪ خَب۪يرٌ بَص۪يرٌ ﴿٢٧﴾ وَهُوَ الَّذ۪ي يُنَزِّلُ الْغَيْثَ
مِنْ بَعْدِ مَا قَنَطُوا وَيَنْشُرُ رَحْمَتَهُۜ وَهُوَ الْوَلِيُّ الْحَم۪يدُ ﴿٢٨﴾
وَمِنْ اٰيَاتِه۪ خَلْقُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَثَّ ف۪يهِمَا مِنْ دَٓابَّةٍۜ وَهُوَ
عَلٰى جَمْعِهِمْ اِذَا يَشَٓاءُ قَد۪يرٌ ﴿٢٩﴾ وَمَٓا اَصَابَكُمْ مِنْ مُص۪يبَةٍ فَبِمَا
كَسَبَتْ اَيْد۪يكُمْ وَيَعْفُوا عَنْ كَث۪يرٍۜ ﴿٣٠﴾ وَمَٓا اَنْتُمْ بِمُعْجِز۪ينَ
فِي الْاَرْضِۚ وَمَا لَكُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مِنْ وَلِيٍّ وَلَا نَص۪يرٍ ﴿٣١﴾

**23.** Ya ku Allah ji evdên xwe yên îman anîne û amelên salih dikin re mizgînîya wê dide ev e. Bibêje: “Ez ji xeynî pêwendîya/hiqûqa (biçavkanîya) eqrebatîyê pê ve tu heqekî ji we naxwazim/yek daxwaza min çavnêrîya we ya eqrebatîyê ye. Her kî xweşikîyekî/qencîyekî bi dest bixe, em xweşikîya wî/qencîya wî zêde dikin. Lewre Allah (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (ew ê sipasîyê li evdên xwe dike û mikafata şikurdaran bi zêdehî dide) Şekûr e.”

**24.** Nexwe ew wiha dibêjin: “Derew lihev anî û bêbextî li Allah kir.” Eger Allah bixwaze wê qelbê te (bi sebir û yeqîn) mohr bike (bêbextî û raberizîna wan tu zerar nade te). Allah, batilê jê dibe û tune dike. Heçî heqîyê jî bi kelîmeyên xwe (yên ku ji pêxember re wehîy kirine) qaîm dike/li pîya dihêle. Lewre ew, bi ya di singan de veşartî ne dizane.

**25.** Yê ku ji evdên xwe tobeyan qebûl dike û xerabîyan efû dike ew e. Û ew, bi karûkirinên we dizane.

**26.** Wan kesên îman anîne û amelê salih dikin, (Allah) îcabetî (dûayê) wan dike. Lutf û îhsana xwe zêdekirî (dide) wan. Heçî ji bo kafiran jî ezabekî dijwar heye.

**27.** Eger Allah ji evdên xwe re riziq berfireh bikira qet tu guman tune ku wê li ser rûyê erdê piroletî/aşiritî bikirana û ji hedê xwe derketibana. Lê belê bi pîvana ku ew daxwaz dike (riziq) dadixîne. Bêguman ew, ji rewşa evdên xwe agahdar e û wan dibîne.

**28.** Yê ku piştî hêvîya xwe (ji rahmeta wî) dibirin baranê dibarîne û rahmeta xwe belave dike ew e. Ew, (yê ku evdên xwe dost digire û ji mûmînan re dostekî rast e) Welîy û (yê ku herî zêde hemd û pesinandinê heq dike û ji alîyê heyînan ve tê pesinandin) Hamîd e.

**29.** Xuliqandina erd û esmanan û di nav her duyan de zêdekirin û belavkirina her cureya candar jî ji ayetên wî ne. Û ew qadir e ku çi dema bixwaze wan (bivejîne û) li cem hev bicivîne.

**30.** Her çi mûsîbetê bê serê we, ji sedema ew tişt (guneh) ên we bi dest xistine ye. Herwiha (Allah) pirên wan jî efû dike.

**31.** Hûn li ser rûyê erdê (Allah, ji kirina ku ew dixwaze) nikarin aciz bihêlin. Ji we re ji Allah pê ve ne dost û ne jî alîkarek heye.

وَمِنْ اٰيَاتِهِ الْجَوَارِ فِي الْبَحْرِ كَالْاَعْلَامِ ﴿٣٢﴾ اِنْ يَشَاْ يُسْكِنِ الرّ۪يحَ
فَيَظْلَلْنَ رَوَاكِدَ عَلٰى ظَهْرِه۪ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِكُلِّ صَبَّارٍ شَكُورٍ ﴿٣٣﴾
اَوْ يُوبِقْهُنَّ بِمَا كَسَبُوا وَيَعْفُ عَنْ كَث۪يرٍ ﴿٣٤﴾ وَيَعْلَمَ الَّذ۪ينَ
يُجَادِلُونَ ف۪ٓي اٰيَاتِنَاۜ مَا لَهُمْ مِنْ مَح۪يصٍ ﴿٣٥﴾ فَمَٓا اُو۫ت۪يتُمْ مِنْ شَيْءٍ
فَمَتَاعُ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۚ وَمَا عِنْدَ اللّٰهِ خَيْرٌ وَاَبْقٰى لِلَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
وَعَلٰى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَۚ ﴿٣٦﴾ وَالَّذ۪ينَ يَجْتَنِبُونَ كَبَٓائِرَ الْاِثْمِ
وَالْفَوَاحِشَ وَاِذَا مَا غَضِبُوا هُمْ يَغْفِرُونَۚ ﴿٣٧﴾ وَالَّذ۪ينَ اسْتَجَابُوا
لِرَبِّهِمْ وَاَقَامُوا الصَّلٰوةَۖ وَاَمْرُهُمْ شُورٰى بَيْنَهُمْۖ وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ
يُنْفِقُونَۚ ﴿٣٨﴾ وَالَّذ۪ينَ اِذَٓا اَصَابَهُمُ الْبَغْيُ هُمْ يَنْتَصِرُونَ ﴿٣٩﴾ وَجَزٰٓؤُا
سَيِّئَةٍ سَيِّئَةٌ مِثْلُهَاۚ فَمَنْ عَفَا وَاَصْلَحَ فَاَجْرُهُ عَلَى اللّٰهِۜ اِنَّهُ لَا يُحِبُّ
الظَّالِم۪ينَ ﴿٤٠﴾ وَلَمَنِ انْتَصَرَ بَعْدَ ظُلْمِه۪ فَاُو۬لٰٓئِكَ مَا عَلَيْهِمْ مِنْ سَب۪يلٍۜ ﴿٤١﴾
اِنَّمَا السَّب۪يلُ عَلَى الَّذ۪ينَ يَظْلِمُونَ النَّاسَ وَيَبْغُونَ فِي الْاَرْضِ بِغَيْرِ
الْحَقِّۜ اُو۬لٰٓئِكَ لَهُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٤٢﴾ وَلَمَنْ صَبَرَ وَغَفَرَ اِنَّ ذٰلِكَ لَمِنْ
عَزْمِ الْاُمُورِ ﴿٤٣﴾ وَمَنْ يُضْلِلِ اللّٰهُ فَمَا لَهُ مِنْ وَلِيٍّ مِنْ بَعْدِه۪ۜ وَتَرَى
الظَّالِم۪ينَ لَمَّا رَاَوُا الْعَذَابَ يَقُولُونَ هَلْ اِلٰى مَرَدٍّ مِنْ سَب۪يلٍۚ ﴿٤٤﴾




**32.** Ew keştîyên wekî çiyan ku di behrê de diherikin jî ji ayetên Allah in.

**33.** Eger bixwaze wê bayê bisekinîne û (keştî jî) li ser behrê behitî dimînin. Bêguman di vê de ji bo kesên pir sebirvan û pir şikurdar re ayet hene.

**34.** An jî bi sedema amelên (gunehên) ew ên (di keştîyê de) wan helak dike. Zehfên wan jî efû dike (ji helake xelas dike).

**35.** Heçî ew ên der heqê ayetên me de nîqaş dikin, bila bizanibin ku ji bo wan qet tu rev tune (Allah, ayetên ku ji qudreta wî re dibin delîl bi bîr tîne).

**36.** Ew ên ku ji we re hatine dayîn bitevahî, metaên jiyana dinyayê ên (bihûrbar) in. Lê tiştên li îndallah/li cem Allah in, ji bo kesên îman anîne û xwe bitenê dispêrin Rabbê xwe re herî bixêrtir û mayînde ne.

**37.** Ew in ku; ji gunehên mezin û ji fuhşîyatê xwe diparêzin û dema hêrs dibin jî efû dikin.

**38.** Ew, îcabetî vexwendina Rabbê xwe (îman û amelê salih) dikin û nimêjê rasterast dikin. Karên wan, di navbera wan de bi şêwr e. Ji rizqên ku em didin wan înfaq dikin.

**39.** Ew in ku; dema neheqîyek tê serê wan alîkarîya hevdu dikin.

**40.** Berdêla xerabîyê, bi qasî wê xerabîyê ye. Kî jî (digel neheqî lê hatîye kirin) efû bike û isleh bike, xelata wî aîdê Allah e. Bêguman ew, ji zaliman hez nake.
(Bnr. 4/Nîsa, 148)

**41.** Kî jî piştî ku zilim lê hatîye kirin heyfa xwe bistîne, di aleyha yên wisan de rêyek tune. (Nayên lomandin û cezakirin.)

**42.** Yên di aleyha wan de rê heye, ew ên zilim li însanan dikin û li ser rûyê erdê bi neheqî zêde pê de diçin in. Ji bo wan ezabekî biêş û jan heye.

**43.** Kî jî sebir bike û bibexşîne bêguman ev, ji karên layiqê azmê ye.

**44.** Allah her kî bixerifîne, piştî vê ji bo wî (yê ku wî carekî din hîdayet bike) qet tu dost tune. Dema ku ezab dibînin tu dinêrî ku ew ên zilimkar wiha dibêjin: “Ji veger (a dinyayê) re rêyek heye gelo?”

وَتَرٰيهُمْ يُعْرَضُونَ عَلَيْهَا خَاشِعٖينَ مِنَ الذُّلِّ يَنْظُرُونَ
مِنْ طَرْفٍ خَفِيٍّۜ وَقَالَ الَّذٖينَ اٰمَنُوٓا اِنَّ الْخَاسِرٖينَ الَّذٖينَ
خَسِرُوٓا اَنْفُسَهُمْ وَاَهْلٖيهِمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ اَلَٓا اِنَّ الظَّالِمٖينَ
فٖي عَذَابٍ مُقٖيمٍ ﴿٤٥﴾ وَمَا كَانَ لَهُمْ مِنْ اَوْلِيَٓاءَ يَنْصُرُونَهُمْ
مِنْ دُونِ اللّٰهِۜ وَمَنْ يُضْلِلِ اللّٰهُ فَمَا لَهُ مِنْ سَبٖيلٍۜ ﴿٤٦﴾ اِسْتَجٖيبُوا
لِرَبِّكُمْ مِنْ قَبْلِ اَنْ يَأْتِيَ يَوْمٌ لَا مَرَدَّ لَهُ مِنَ اللّٰهِۜ مَا لَكُمْ
مِنْ مَلْجَاٍ يَوْمَئِذٍ وَمَا لَكُمْ مِنْ نَكٖيرٍ ﴿٤٧﴾ فَاِنْ اَعْرَضُوا
فَمَٓا اَرْسَلْنَاكَ عَلَيْهِمْ حَفٖيظًاۜ اِنْ عَلَيْكَ اِلَّا الْبَلَاغُۜ وَاِنَّٓا
اِذَٓا اَذَقْنَا الْاِنْسَانَ مِنَّا رَحْمَةً فَرِحَ بِهَاۚ وَاِنْ تُصِبْهُمْ سَيِّئَةٌ
بِمَا قَدَّمَتْ اَيْدٖيهِمْ فَاِنَّ الْاِنْسَانَ كَفُورٌ ﴿٤٨﴾ لِلّٰهِ مُلْكُ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ يَخْلُقُ مَا يَشَٓاءُۜ يَهَبُ لِمَنْ يَشَٓاءُ اِنَاثًا
وَيَهَبُ لِمَنْ يَشَٓاءُ الذُّكُورَۙ ﴿٤٩﴾ اَوْ يُزَوِّجُهُمْ ذُكْرَانًا وَاِنَاثًاۚ
وَيَجْعَلُ مَنْ يَشَٓاءُ عَقٖيمًاۜ اِنَّهُ عَلٖيمٌ قَدٖيرٌ ﴿٥٠﴾ وَمَا كَانَ
لِبَشَرٍ اَنْ يُكَلِّمَهُ اللّٰهُ اِلَّا وَحْيًا اَوْ مِنْ وَرَٓائِ حِجَابٍ
اَوْ يُرْسِلَ رَسُولًا فَيُوحِيَ بِاِذْنِهٖ مَا يَشَٓاءُۜ اِنَّهُ عَلِيٌّ حَكٖيمٌ ﴿٥١﴾

**45.** Dema ew ji agir re tên rapêşkirin tu wan dibînî ku ew ji ber riswatîyê sitûxwar in û di bin çavên xwe de dinerin. Ew ên îman anîne wiha dibêjin: “Bêguman ew ên bi xusranê ketine (ew kes in ku;) roja qiyametê xwe jî û malbata xwe jî bi xusranê xistine.” Baldar bin/Dîqat bikin! Bêguman ew ên zalim di ezabekî bênavber de ne.

**46.** Ji xeynî Allah qet tu dostên wan ên ku alîkarîya wan bikin tune. Allah, her kî xerifandibe, ji bo wî qet tu rê (ya xelasîyê) tune.

**47.** (Bi sedema hukmê daye), berîya hatina wê roja ku vegerandina wê ya ji Allah ne mimkûn e, îcabetî vexwendina Rabbê xwe (îman û amelê salih) bikin. Wê rojê ji bo we ne sitargehek û ne jî cihekî xweveşartinê heye.

**48.** Eger rû vegerînin, me tu li ser wan nekiriye çavdêr (ku amelên wan qeyd bikî). Wezîfeya te bitenê teblîx e. Bêguman em, dema ku ji alî xwe ve rahmetekê bi însan ditamînin ji ber vê yekê kêfxweş dibe û rû digire. Lê dema ji ber (amelên keda) destê wî xerabîyek tê serê wî, bi rastî însan dibe ji nankoran.

**49.** Hakimîyeta/serwerîya erd û esmanan aîdê Allah e. Çi daxwaz bike dixuliqîne. Ji kî re bixwaze (zarokê) keç, ji kî re bixwaze kur dibexşîne.

**50.** (Ew ji kî re bixwaze) ji zarokên kêç û kur bi hev re/cêwî dide wan. Kî jî bivê bernegir/aqîm dihêle. Lewre ew, (zanayê her tiştî) Alîm û (yê ku hêza wî digihîje her tiştî û xwedî qudreta mutleq) Qadîr e.

**51.** Ji xeynî wehîykirinê an (axaftina) pişt perdê an jî bi îzna xwe bi şandina qasidek/melaîketek pê ve qet nabe ku Allah bi însanekî re biaxive. Bêguman ew yê ku (bi zat û sifetên xwe herî bilind) Alîy û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

وَكَذٰلِكَ اَوْحَيْنَٓا اِلَيْكَ رُوحًا مِنْ اَمْرِنَاۜ مَا كُنْتَ تَدْرٖى
مَا الْكِتَابُ وَلَا الْاٖيمَانُ وَلٰكِنْ جَعَلْنَاهُ نُورًا نَهْدٖى بِهٖ مَنْ نَشَٓاءُ
مِنْ عِبَادِنَاۜ وَاِنَّكَ لَتَهْدٖٓى اِلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقٖيمٍۙ ﴿٥٢﴾ صِرَاطِ اللّٰهِ
الَّذٖى لَهُ مَا فِى السَّمٰوَاتِ وَمَا فِى الْاَرْضِۜ اَلَٓا اِلَى اللّٰهِ تَصٖيرُ الْاُمُورُ ﴿٥٣﴾

سُورَةُ الزُّخْرُفِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ تِسْعٌ وَثَمَانُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
حٰمٓۜ ﴿١﴾ وَالْكِتَابِ الْمُبٖينِۙ ﴿٢﴾ اِنَّا جَعَلْنَاهُ قُرْاٰنًا عَرَبِيًّا لَعَلَّكُمْ
تَعْقِلُونَۚ ﴿٣﴾ وَاِنَّهُ فٖٓى اُمِّ الْكِتَابِ لَدَيْنَا لَعَلِيٌّ حَكٖيمٌۜ ﴿٤﴾
اَفَنَضْرِبُ عَنْكُمُ الذِّكْرَ صَفْحًا اَنْ كُنْتُمْ قَوْمًا مُسْرِفٖينَ ﴿٥﴾
وَكَمْ اَرْسَلْنَا مِنْ نَبِيٍّ فِى الْاَوَّلٖينَ ﴿٦﴾ وَمَا يَأْتٖيهِمْ مِنْ نَبِيٍّ
اِلَّا كَانُوا بِهٖ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٧﴾ فَاَهْلَكْنَٓا اَشَدَّ مِنْهُمْ بَطْشًا
وَمَضٰى مَثَلُ الْاَوَّلٖينَ ﴿٨﴾ وَلَئِنْ سَاَلْتَهُمْ مَنْ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ لَيَقُولُنَّ خَلَقَهُنَّ الْعَزٖيزُ الْعَلٖيمُۙ ﴿٩﴾ اَلَّذٖى جَعَلَ لَكُمُ
الْاَرْضَ مَهْدًا وَجَعَلَ لَكُمْ فٖيهَا سُبُلًا لَعَلَّكُمْ تَهْتَدُونَۚ ﴿١٠﴾

**52.** Bi vî awayî me ji emrê xwe rûhek/Qur'an li te wehîy kir. Te nizanîbû Kitêb û îman çî ye. Lê, me ew kir nûrek ku bi wê em ji evdên xwe ji kî re bixwazin wî digihînin hîdayetê. Bêguman tu, digihînî ser rêya rasterast.

**53.** (Ew rê) rêya wî Allahê ye ku hemû tiştên li erd û esmanan aîdê wî ne. Hemû kar, bi bal Allah ve tên vegerandin.



## 43. SÛREYA ZÛXRÛF

*(Sûreya Zûxrûf, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heştê û neh (89) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya çil û sêyemîn e. Zûxrûf, tê ser maneya xemlan/zînetan. Peyva Zûxrûf di ayeta 35. de dibore û sûre jî navê xwe jê girtîye. Sebebê vê navandinê jî ev e: Allah (ac) ne li gorî Zûxrûfên/Zînetên wan, berevajî li gorî aqîde û amelên wan rûmet dide însanan. Di sûreyê de mijarên Erş û Rahmân û ji pêxemberan Îsa û Mûsa (as) û Firewn û roja Qiyametê tên vegotin. Herwisa behsa ehlê cehennemê û axaftina wan ya bi Malik (bekçîyê cehennemê) rê tê kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.).*

**1.** Hâ, Mîm.

**2.** Sond be bi wê Kitêba vikîvekirî/raveker ku;

**3.** Ji bo ku hûn aqil bigirin me ew kir Kitêbeke Erebî.

**4.** Qet tu guman tune ew, Kitêbek e ku di Kitêba bingehîn ya li cem me (Lewhu'l Mahfûz) de qedirbilind û xwedî hikmet e.

**5.** Ji ber ku hûn qewmekî ji hedê xwe borîne, ma em dev ji hişyarîya we ya bi zikrê/bi Qur'anê berdin?

**6.** Lê me di navbera wan ên berê de jî gelek pêxember şandine.

**7.** Çi dema ji wan re pêxember dihat, muheqeq wan tinazên xwe pê dikirin.

**8.** Me ew ên ji alî hêzê ve ji wan (Mekkîyan) serdesttir bûn jî helak kirin. Mînaka wan ên berê (di Kitêb de) borîye.

**9.** Eger tu ji wan bipirsî: "Erd û esman kî xuliqandîye?" teqez wê bibêjin: "Ew ê (xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (zanayê her tiştî) Alîm, wan xuliqandîye."

(Kesê muşrîk îdîa bike ku bi Allah bawer e jî îmana wî betal e. Ji bo raveya berfirehî li îzaha van ayetan bnr: 23/Mumînûn, 84-90.)

**10.** Ew (Allah) e ku; erd ji we re kiriye binrax/doşek û ji bo ku hûn bigihîjin (armanca xwe) rêyan heyî kir.

وَالَّذٖى نَزَّلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً بِقَدَرٍ فَاَنْشَرْنَا بِهٖ بَلْدَةً مَيْتًا
كَذٰلِكَ تُخْرَجُونَ ﴿١١﴾ وَالَّذٖى خَلَقَ الْاَزْوَاجَ كُلَّهَا
وَجَعَلَ لَكُمْ مِنَ الْفُلْكِ وَالْاَنْعَامِ مَا تَرْكَبُونَ ﴿١٢﴾ لِتَسْتَوُا
عَلٰى ظُهُورِهٖ ثُمَّ تَذْكُرُوا نِعْمَةَ رَبِّكُمْ اِذَا اسْتَوَيْتُمْ عَلَيْهِ
وَتَقُولُوا سُبْحَانَ الَّذٖى سَخَّرَ لَنَا هٰذَا وَمَا كُنَّا لَهُ مُقْرِنٖينَ ﴿١٣﴾
وَاِنَّٓا اِلٰى رَبِّنَا لَمُنْقَلِبُونَ ﴿١٤﴾ وَجَعَلُوا لَهُ مِنْ عِبَادِهٖ جُزْءًا
اِنَّ الْاِنْسَانَ لَكَفُورٌ مُبٖينٌ ﴿١٥﴾ اَمِ اتَّخَذَ مِمَّا يَخْلُقُ بَنَاتٍ
وَاَصْفٰيكُمْ بِالْبَنٖينَ ﴿١٦﴾ وَاِذَا بُشِّرَ اَحَدُهُمْ بِمَا ضَرَبَ
لِلرَّحْمٰنِ مَثَلًا ظَلَّ وَجْهُهُ مُسْوَدًّا وَهُوَ كَظٖيمٌ ﴿١٧﴾ اَوَمَنْ
يُنَشَّؤُا فِى الْحِلْيَةِ وَهُوَ فِى الْخِصَامِ غَيْرُ مُبٖينٍ ﴿١٨﴾ وَجَعَلُوا
الْمَلٰٓئِكَةَ الَّذٖينَ هُمْ عِبَادُ الرَّحْمٰنِ اِنَاثًا اَشَهِدُوا خَلْقَهُمْ
سَتُكْتَبُ شَهَادَتُهُمْ وَيُسْـَٔلُونَ ﴿١٩﴾ وَقَالُوا لَوْ شَٓاءَ الرَّحْمٰنُ
مَا عَبَدْنَاهُمْ مَا لَهُمْ بِذٰلِكَ مِنْ عِلْمٍ اِنْ هُمْ اِلَّا يَخْرُصُونَ ﴿٢٠﴾
اَمْ اٰتَيْنَاهُمْ كِتَابًا مِنْ قَبْلِهٖ فَهُمْ بِهٖ مُسْتَمْسِكُونَ ﴿٢١﴾
بَلْ قَالُوٓا اِنَّا وَجَدْنَٓا اٰبَٓاءَنَا عَلٰٓى اُمَّةٍ وَاِنَّا عَلٰٓى اٰثَارِهِمْ مُهْتَدُونَ ﴿٢٢﴾

**11.** Ew (Allah) e ku; ji ewran bi pîvaneke diyar av daxist. Me bi wê, welatekî mirî vejand. Hûn ê jî ha wisan (ji gorên xwe) bên derxistin.

**12.** Ew (Allah) ku; hemû cotan xuliqandîye û ji keştîyan û heywanan (siwareyên ku) hûn ê lê siwar bibin heyî kir.

**13.** Ji bo ku hûn li pişta wan siwar bibin û paşê dema hûn bi cih bûn nîmetên Rabbê xwe bi bîr bînin (û wiha bibêjin:) “Ew Allahê ku ev daye bin xizmeta me ji hemû kêmasîyan munezzeh e. (Nexwe) quweta me nedigihîşte vê.”

**14.** (Ji bo ku hûn bêjin:) “Û bêguman em ê bi bal Rabbê xwe ve bên vegerandin.”

**15.** (Digel ev qas nîmetên wî) komek ji evdên wî (Allah) rabûn li cem xwe hukim dan ku parçeyekî wî/zarokê wî heye. Qet tu guman tune ku însan, nankorekî vikîvekirî ye.

**16.** Nexwe (Allah), ji nava mexluqên xwe keçan (ji bo xwe wek ewlat) girtîye û kuran jî ji we re hilbijartîye?

**17.** Lê dema mizgîna wê (zarokê keç) ya ku ji Rahmân re (wek ewlad) layiq didîtin ji yekî ji wan re dihat, rûyê wî ji hêrs û qehrê tirş û tehl/ripûreş dibe.

**18.** Nexwe, ew (kêç) ên (nahîf û diltenik û hestîyar ku) di nav xemlê de tên gihandin/mezinkirin û di nîqaşê de nikarin (meqseda xwe) bi eşkerehî beyan bikin (nîsbetî Allah dikin)?

(Hinceta muşrîkên Mekkeyê ya ku zaroyên qîz ne dixwestin yek jî ev raman bû ku; di rewşa şer an jî nîqaşê de ew zaroyên qîz qet tu feyde nade wan. Allah (ac) vê ramana wan bi bîra wan anî û wiha ferman kir: “Nexwe, ew (kêç) ên (nahîf û diltenik û hestîyar ku) di nav xemlê de tên mezinkirin û di nîqaşê de nikarin (meqseda xwe) bi eşkerehî beyan bikin (nîsbetî Allah dikin)?”

**19.** Wan, ew melaîketên ku evdên Rahmân in mê/mak/jin hesibandin. Ma ew ji xuliqandina wan re bibûn şahid? Şahidîya wan tê nivîsandin û ew ê bên pirsyarkirin.

**20.** Gotin: “Eger Rahmân daxwaz bikirana me îbadet (li pûtan) nedikir.” Li ser vê mijarê qet tu agahîya wan tune. Ew bi tenê li ser texmînan in.

**21.** Nexwe, kitêbeke ku berê de me dabû wan heye û ew xwe bi wê têr şidandî digirin?

**22.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî wiha gotin: “Me bavên xwe li ser dînekî dît û em jî di şopa wan de meşîyan û gihîştin hîdayetê.”

وَكَذٰلِكَ مَٓا اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ ف۪ي قَرْيَةٍ مِنْ نَذ۪يرٍ اِلَّا قَالَ
مُتْرَفُوهَٓا اِنَّا وَجَدْنَٓا اٰبَٓاءَنَا عَلٰٓى اُمَّةٍ وَاِنَّا عَلٰٓى اٰثَارِهِمْ مُقْتَدُونَ ﴿٢٣﴾
قَالَ اَوَلَوْ جِئْتُكُمْ بِاَهْدٰى مِمَّا وَجَدْتُمْ عَلَيْهِ اٰبَٓاءَكُمْ قَالُٓوا
اِنَّا بِمَٓا اُرْسِلْتُمْ بِه۪ كَافِرُونَ ﴿٢٤﴾ فَانْتَقَمْنَا مِنْهُمْ فَانْظُرْ كَيْفَ
كَانَ عَاقِبَةُ الْمُكَذِّب۪ينَ ﴿٢٥﴾ وَاِذْ قَالَ اِبْرٰه۪يمُ لِاَب۪يهِ وَقَوْمِه۪ٓ
اِنَّن۪ي بَرَٓاءٌ مِمَّا تَعْبُدُونَ ﴿٢٦﴾ اِلَّا الَّذ۪ي فَطَرَن۪ي فَاِنَّهُ سَيَهْد۪ينِ ﴿٢٧﴾
وَجَعَلَهَا كَلِمَةً بَاقِيَةً ف۪ي عَقِبِه۪ لَعَلَّهُمْ يَرْجِعُونَ ﴿٢٨﴾
بَلْ مَتَّعْتُ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ وَاٰبَٓاءَهُمْ حَتّٰى جَٓاءَهُمُ الْحَقُّ وَرَسُولٌ مُب۪ينٌ ﴿٢٩﴾
وَلَمَّا جَٓاءَهُمُ الْحَقُّ قَالُوا هٰذَا سِحْرٌ وَاِنَّا بِه۪ كَافِرُونَ ﴿٣٠﴾ وَقَالُوا
لَوْلَا نُزِّلَ هٰذَا الْقُرْاٰنُ عَلٰى رَجُلٍ مِنَ الْقَرْيَتَيْنِ عَظ۪يمٍ ﴿٣١﴾
اَهُمْ يَقْسِمُونَ رَحْمَتَ رَبِّكَۜ نَحْنُ قَسَمْنَا بَيْنَهُمْ مَع۪يشَتَهُمْ
فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَرَفَعْنَا بَعْضَهُمْ فَوْقَ بَعْضٍ دَرَجَاتٍ لِيَتَّخِذَ
بَعْضُهُمْ بَعْضًا سُخْرِيًّاۜ وَرَحْمَتُ رَبِّكَ خَيْرٌ مِمَّا يَجْمَعُونَ ﴿٣٢﴾
وَلَوْلَٓا اَنْ يَكُونَ النَّاسُ اُمَّةً وَاحِدَةً لَجَعَلْنَا لِمَنْ يَكْفُرُ
بِالرَّحْمٰنِ لِبُيُوتِهِمْ سُقُفًا مِنْ فِضَّةٍ وَمَعَارِجَ عَلَيْهَا يَظْهَرُونَ ﴿٣٣﴾

**23.** Me berîya te jî çi wext ji welatekî re hişyarkerekî şandibe teqez rûgêrên wê derê ku di nava kamranîyê de dijîn wiha gotin: "Bêguman me bavên xwe li ser dînekî dît û em jî li ser şopa wan in."

(Xwedî derketina kesên giregir ku di nava xweşî û dewlemendîyê de dijîn û dev ji dînê bavûkalên xwe bernadin ji ber vê ye: Ew kesên daxwaz dikin ku rêveberîya gel di destên xwe de bigirin û bibin xwedî îmtîyaz/servedarî, qet naxwazin ku ji bo heqîqetê pîvaneke sabit hebe; xwe bi pîvanên muxleq/nediyar ve digirin. Dema ku bixwazin tiştekî li ser civakê bisêpînin/ferzbikin wiha dibêjin: "Bavûkalên me jî wisan dikirin." An "Em bavûkalên xwe dişopînin." Bi vî awayî bavûkalên xwe wek sipartek nîşan didin. Lewre "Bavûkalan" herî baş ew nas dikin û bi civakê jî dinasînin. Bi vê servedarîyê, bilxese qelsên civakê bê pirsgirêk birêve dibin.)

**24.** (Pêxember) got: "Ez ji we re ji wî dînê ku bavûkalên we li ser bûn rasttir dînekî jî bînim?" Gotin: "Bêguman, ew tiştên hûn pê hatine şandin em wan înkar dikin."

**25.** (Li ser vê) me ji wan tol/heyf sitend. Tu binêre ka aqubeta mukezzîban çawa bûye.

**26.** (Bi bîr bînin!) Dema Îbrahîm ji bavê xwe re got: "Bêguman ez, ji wan tiştên ku hûn îbadetê wan dikin dûr im/berî me."

**27.** "Ew (Allah) ê ku ez xuliqandime ne tê de. Bêguman ew, wê min bigihîne hîdayetê (rastîyê).

**28.** Wî (van peyvan) li pey wî (Îbrahîm) kir kelîmeyekî mayînde da ku însan lê vegerin.

(Li gorî mufessîrên wekî Ibn Abbas (re) û Mucahîd û Dehhak û Qatade û Suddî (rh), piştî Îbrahîm (as) ji bo zurîyeta wî kelîmeya mayînde, kelîmeya "Laîlâheîllallah" e. Li gorî vê, Îbrahîm (as) bi van peyvên xwe kelîmeya tewhîdê jî tefsîr kiriye: Dûr bûna ji hemû taxûtên ku ji xeynî Allah (ac) îbadet li wan tên kirin û bitenê evdîtîya ji wî (ac) re! (Ji bo têgeha "îlâh" a di Qur'anê de û îzaha Kelîmeya Tewhîdê: Bnr. 21/Enbîya, 25)

**29.** Nexêr! Hetanî pêxemberekî heq û ravekar ji nav wan were, min ew û bavên wan sûdmend kir.

**30.** Dema ku heq ji wan re hat wiha gotin: "Ev, sêhr e û em wê înkar dikin."

**31.** Gotin: "Ma ne hewce bû ku ev Qur'an, ji mezinê yekî ji van herdu bajaran re hatibûna daxistin?"

**32.** Ma qey rahmeta Rabbê xwe ew parve dikin? (Hal ev e ku) rizqên wan ên di jiyana dinyayê de me parve kiriye. Ji bo ku kesek bi kesekî din kar/xizmet bide kirin, me hin ji wan ji hinên din bi dereceyan bilindtir girt. Rahmeta Rabbê te ji hemû tiştên civandine û kom kirine bixêrtir e.

**33.** Eger însan nebûna yek ummetek (ku li ser kufrê dicivin û dînê xwe bi dinyayê didin) me yê binbanê xanîyên wan ên ku Rahmân înkar dikin ji zîvê bikirana û ji bo ku pê bilind bibin silmên (ji zîvê) çêkirana.

وَلِبُيُوتِهِمْ اَبْوَابًا وَسُرُرًا عَلَيْهَا يَتَّكِؤُنَۙ ﴿٣٤﴾ وَزُخْرُفًاۜ وَاِنْ
كُلُّ ذٰلِكَ لَمَّا مَتَاعُ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۜ وَالْاٰخِرَةُ عِنْدَ رَبِّكَ
لِلْمُتَّقِينَ ﴿٣٥﴾ وَمَنْ يَعْشُ عَنْ ذِكْرِ الرَّحْمٰنِ نُقَيِّضْ لَهُ
شَيْطَانًا فَهُوَ لَهُ قَرِينٌ ﴿٣٦﴾ وَاِنَّهُمْ لَيَصُدُّونَهُمْ عَنِ السَّبِيلِ
وَيَحْسَبُونَ اَنَّهُمْ مُهْتَدُونَ ﴿٣٧﴾ حَتّٰٓى اِذَا جَٓاءَنَا قَالَ يَا لَيْتَ بَيْنِى
وَبَيْنَكَ بُعْدَ الْمَشْرِقَيْنِ فَبِئْسَ الْقَرِينُ ﴿٣٨﴾ وَلَنْ يَنْفَعَكُمُ
الْيَوْمَ اِذْ ظَلَمْتُمْ اَنَّكُمْ فِى الْعَذَابِ مُشْتَرِكُونَ ﴿٣٩﴾ اَفَاَنْتَ
تُسْمِعُ الصُّمَّ اَوْ تَهْدِى الْعُمْىَ وَمَنْ كَانَ فِى ضَلَالٍ مُبِينٍ ﴿٤٠﴾
فَاِمَّا نَذْهَبَنَّ بِكَ فَاِنَّا مِنْهُمْ مُنْتَقِمُونَۙ ﴿٤١﴾ اَوْ نُرِيَنَّكَ الَّذِى
وَعَدْنَاهُمْ فَاِنَّا عَلَيْهِمْ مُقْتَدِرُونَ ﴿٤٢﴾ فَاسْتَمْسِكْ بِالَّذِٓى
اُوحِىَ اِلَيْكَۚ اِنَّكَ عَلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقِيمٍ ﴿٤٣﴾ وَاِنَّهُ لَذِكْرٌ لَكَ
وَلِقَوْمِكَۚ وَسَوْفَ تُسْـَٔلُونَ ﴿٤٤﴾ وَسْـَٔلْ مَنْ اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ
مِنْ رُسُلِنَاۗ اَجَعَلْنَا مِنْ دُونِ الرَّحْمٰنِ اٰلِهَةً يُعْبَدُونَ ﴿٤٥﴾ وَلَقَدْ
اَرْسَلْنَا مُوسٰى بِاٰيَاتِنَٓا اِلٰى فِرْعَوْنَ وَمَلَا۬ئِهٖ فَقَالَ اِنِّى رَسُولُ رَبِّ
الْعَالَمِينَ ﴿٤٦﴾ فَلَمَّا جَٓاءَهُمْ بِاٰيَاتِنَٓا اِذَا هُمْ مِنْهَا يَضْحَكُونَ ﴿٤٧﴾

**34.** Me yê ji wan re (ji zîvê) derîyan û sedirên ku li ser rûnin û palê xwe bidinê çêkirana.

**35.** Û (wekî din) xemlan/zînetan... Ev hemû, meta (ên bihûrbar) yên jiyana dinyayê ne. Heçî axîret jî li cem Rabbê te yên mutteqîyan e.

**36.** Kî jî ji zikra Rahmân rû vegerîne, em şeytanek pê ve girê didin (û ew şeytan tim) ligel wî ye.

**37.** Qet tu guman tune ew (şeytan), wan ji rê digire, lê ew zen dikin ku li ser rêya rast in.

**38.** Axir dema ku têne cem me (ji şeytan re wiha) dibêjin: "Xwezî di navbera min û te de bi qasî rojhilat û rojava mesafe hebûya. Tu çi hevalekî xerab î."

**39.** Îro (qet tu tiştek) feyde nade we. Lewre hûn zalim bûn. Bêşik hûn di ezabê de jî hevpar/şirîk in.

**40.** Ma qey tu yê bi kesê ker bidî sehkirin û rê nîşanî wî yê kor û di rêşaşîyê de ye bidî?

**41.** Em te bibin jî bêguman em ê tol/heyf ji wan bistînin.

**42.** An jî ew (ezab) a ku me ji wan re wead kiribû em ê nîşanî te bidin. Bêguman em li ser wan muqtedîr in.

**43.** Tu xwe têr şidandî bi wehîyê ve bigire. Bêşik tu, li ser rêyeke rasterast î.

**44.** Bi rastî ew (Qur'an), ji bo te û qewmê te zikrek (bibîranînek, rûmetek) e. Hûn ê (ji wê) bêne pirsîn.

(Ayetên 43. û 44. ji mûmînan re rêya şeref û îzzet û serdestîyê nîşan dide. Pêgirtina wehîyê bi têr şidandî û şerefyarbûna pê... Îro, pêgirtina çavkanîyên ji xeynî wehîyê û lêgerîna îzzet û rûmetê di bernameyên beşerî ya derê Qur'anê jî ji pirsgirêkên me yên bingehîn in.)

**45.** Ji wan pêxemberên ku me berîya te şandine bipirse (em binêrin), me ji xeynî Rahmân qet tu îlâhên ku îbadet li wan tên kirin çêkiriye?

(Ji bo têgeha îlâh a di Qur'anê de û îzaha Kelîmeya Tewhîdê: Bnr. 21/Enbîya, 25)

**46.** Sond be me Mûsa, bi ayetên xwe ji Fîrewn û giregirên wî re şand. Got: "Bêguman ez, qasidê Rabbê aleman im."

**47.** Dema ku bi ayetên me hate cem wan, dest bi kenê (û tinazkarîyê) kirin.

وَمَا نُرِيهِمْ مِنْ اٰيَةٍ اِلَّا هِيَ اَكْبَرُ مِنْ اُخْتِهَاۘ وَاَخَذْنَاهُمْ
بِالْعَذَابِ لَعَلَّهُمْ يَرْجِعُونَ ﴿٤٨﴾ وَقَالُوا يَٓا اَيُّهَ السَّاحِرُ
ادْعُ لَنَا رَبَّكَ بِمَا عَهِدَ عِنْدَكَ اِنَّنَا لَمُهْتَدُونَ ﴿٤٩﴾ فَلَمَّا
كَشَفْنَا عَنْهُمُ الْعَذَابَ اِذَا هُمْ يَنْكُثُونَ ﴿٥٠﴾ وَنَادٰى
فِرْعَوْنُ فِي قَوْمِهِ قَالَ يَا قَوْمِ اَلَيْسَ لِي مُلْكُ مِصْرَ وَهٰذِهِ
الْاَنْهَارُ تَجْرِي مِنْ تَحْتِيۚ اَفَلَا تُبْصِرُونَۜ ﴿٥١﴾ اَمْ اَنَا۬ خَيْرٌ
مِنْ هٰذَا الَّذِي هُوَ مَهِينٌ وَلَا يَكَادُ يُبِينُ ﴿٥٢﴾ فَلَوْلَٓا اُلْقِيَ عَلَيْهِ
اَسْوِرَةٌ مِنْ ذَهَبٍ اَوْ جَٓاءَ مَعَهُ الْمَلٰٓئِكَةُ مُقْتَرِنِينَ ﴿٥٣﴾
فَاسْتَخَفَّ قَوْمَهُ فَاَطَاعُوهُۜ اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمًا فَاسِقِينَ ﴿٥٤﴾
فَلَمَّٓا اٰسَفُونَا انْتَقَمْنَا مِنْهُمْ فَاَغْرَقْنَاهُمْ اَجْمَعِينَۙ ﴿٥٥﴾ فَجَعَلْنَاهُمْ
سَلَفًا وَمَثَلًا لِلْاٰخِرِينَ ﴿٥٦﴾ وَلَمَّا ضُرِبَ ابْنُ مَرْيَمَ مَثَلًا
اِذَا قَوْمُكَ مِنْهُ يَصِدُّونَ ﴿٥٧﴾ وَقَالُٓوا ءَاٰلِهَتُنَا خَيْرٌ اَمْ هُوَۜ
مَا ضَرَبُوهُ لَكَ اِلَّا جَدَلًاۜ بَلْ هُمْ قَوْمٌ خَصِمُونَ ﴿٥٨﴾
اِنْ هُوَ اِلَّا عَبْدٌ اَنْعَمْنَا عَلَيْهِ وَجَعَلْنَاهُ مَثَلًا لِبَنِٓي اِسْرَٓائِيلَۜ ﴿٥٩﴾
وَلَوْ نَشَٓاءُ لَجَعَلْنَا مِنْكُمْ مَلٰٓئِكَةً فِي الْاَرْضِ يَخْلُفُونَ ﴿٦٠﴾

**48.** Her ayeta ku em nîşanî wan didin ji birayê xwe (ya pêşîn) herî mezintir e. Belkî bi bal (heqîyê) ve vegerin, me ew bi ezab zeft kir.

**49.** Gotin: "Ya sêhrbaz! Ji bo me bi xatirê wê ehda daye te (ku wê dûayê te qebûl bike) ji Rabbê xwe re dûa bike. (Ger ezabê biborîne) bêşik em ê bibin ehlê hîdayetê."

**50.** Dema me ezab ji ser wan rakir, hema ehda xwe xera kirin.

**51.** Fîrewn li qewmê xwe gazî kir û got: "Gelî qewmê min! Ma milkê/serwerîya Misrê û çemên di binê min de diherikin ne aîdê min in? Ma hûn nabînin?"

**52.** "Nexwe ez ji vî însanê ji rêzê ku nikare merama/meqseda xwe vebibêje ne bixêrtir im."

**53.** "Ma ne pêwist/hewce bû ku bazinên zêrîn li ser wî bihatana avêtin? An jî ma ne divêt ku ligel wî melaîket jî bihatana?"

**54.** Herwiha qewmê xwe sivik dît/bêrûmet kir/keregêjî kir û wan jî îtaet kirin. Bêguman ew, qewmekî fasiq bûn.

**55.** Dema ku ewana em hêrs kirin, me jî ji wan tol/heyf sitend û me ew hemû (di behrê de) xeniqandin.

**56.** Bi vî awayî me ew, ji yên ku di pey wan de tên re kirin mîsalekî raborî û honawerî/îbret.

**57.** Dema ku me mîsala (Îsa yê) kurê Meryem da, qewmê te hema dest bi qerewarê kirin.

(Dema ku muşrîkan navê Îsa (as) seh dikirin ji kêfa qêrînî bi wan diket. Xirîstîyanên ehlê kitêb ku zarok nisbetê Allah (ac) dikirin û dûakirina wan ji Îsa (as) re û bi dest xistina feyde û nefiykirina zerarê jê hêvîkirina wan, muşrîkan ji bo xwe wek delîlekî digirtin ku ew bixwe jî li ser rêya rast in.)

**58.** Gotin: "Gelo îlâhên me bixêrtir in an ew?" Wan ew, ji bo ku bi te re nîqaşê bikin kirin mînak. Berevajî ew, qewmekî (di nîqaşê de ji hedê xwe diborin û) di dijminahîyê de zêde pê de diçin in.

**59.** Ew, bitenê evdek e. Me nîmet da wî û ew, ji bo Benî Îsraîl kir mînakek/mîsalek.

**60.** Eger me bixwesta me yê ji nav we melaîketan bixuliqanda û ew ê li ser rûyê erdê bibûna xelefên/şûngirên we.

وَاِنَّهُ لَعِلْمٌ لِلسَّاعَةِ فَلَا تَمْتَرُنَّ بِهَا وَاتَّبِعُونِۜ هٰذَا صِرَاطٌ
مُسْتَقِيمٌ ﴿٦١﴾ وَلَا يَصُدَّنَّكُمُ الشَّيْطَانُۚ اِنَّهُ لَكُمْ عَدُوٌّ
مُبِينٌ ﴿٦٢﴾ وَلَمَّا جَٓاءَ عِيسٰى بِالْبَيِّنَاتِ قَالَ قَدْ جِئْتُكُمْ
بِالْحِكْمَةِ وَلِاُبَيِّنَ لَكُمْ بَعْضَ الَّذٖى تَخْتَلِفُونَ فٖيهِۚ
فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطٖيعُونِ ﴿٦٣﴾ اِنَّ اللّٰهَ هُوَ رَبّٖى وَرَبُّكُمْ فَاعْبُدُوهُۜ
هٰذَا صِرَاطٌ مُسْتَقٖيمٌ ﴿٦٤﴾ فَاخْتَلَفَ الْاَحْزَابُ مِنْ بَيْنِهِمْۚ
فَوَيْلٌ لِلَّذٖينَ ظَلَمُوا مِنْ عَذَابِ يَوْمٍ اَلٖيمٍ ﴿٦٥﴾ هَلْ يَنْظُرُونَ
اِلَّا السَّاعَةَ اَنْ تَأْتِيَهُمْ بَغْتَةً وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٦٦﴾ اَلْاَخِلَّٓاءُ
يَوْمَئِذٍ بَعْضُهُمْ لِبَعْضٍ عَدُوٌّ اِلَّا الْمُتَّقٖينَۜ ﴿٦٧﴾ يَا عِبَادِ
لَا خَوْفٌ عَلَيْكُمُ الْيَوْمَ وَلَٓا اَنْتُمْ تَحْزَنُونَۚ ﴿٦٨﴾ اَلَّذٖينَ
اٰمَنُوا بِاٰيَاتِنَا وَكَانُوا مُسْلِمٖينَۚ ﴿٦٩﴾ اُدْخُلُوا الْجَنَّةَ اَنْتُمْ
وَاَزْوَاجُكُمْ تُحْبَرُونَ ﴿٧٠﴾ يُطَافُ عَلَيْهِمْ بِصِحَافٍ مِنْ ذَهَبٍ
وَاَكْوَابٍۚ وَفٖيهَا مَا تَشْتَهٖيهِ الْاَنْفُسُ وَتَلَذُّ الْاَعْيُنُۚ وَاَنْتُمْ فٖيهَا
خَالِدُونَۚ ﴿٧١﴾ وَتِلْكَ الْجَنَّةُ الَّتٖٓى اُورِثْتُمُوهَا بِمَا كُنْتُمْ
تَعْمَلُونَ ﴿٧٢﴾ لَكُمْ فٖيهَا فَاكِهَةٌ كَثٖيرَةٌ مِنْهَا تَأْكُلُونَ ﴿٧٣﴾

**61.** Bêguman ew (Îsa) ji bo qiyametê agahî ye (ji nêzîkahîya rabûna qiyametê re elamet e). Nexwe tê de qet li ber gumana nekevin û bibin tabiê min. Ev, rêya rasterast e.

**62.** Zinhar, bila şeytan we (ji rêya Allah) pênegire. Lewre ew, dijminê we yê vikîvekirî ye.

**63.** Dema ku Îsa bi delîlên apaşkera hat, wiha got: “Muheqeq min ji we re hikmet anîye û ez ji bo ravekirina hin mijarên ku hûn li ser îxtîlafê dikin hatime. Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îtaetî min bikin.”

**64.** “Bi rastî Allah, Rabbê min û Rabbê we ye jî. Îbadetê wî bikin. Ev, rêya rasterast e.”

**65.** Kom/grûp di navbera xwe de ketin îxtîlafê. Ji ber ezabê rojeke biêş û jan weyl li zaliman be.

**66.** Qey li hêvîya wê tiştê ne ku dema qet haya wan jê tune ji nîşka ve qiyamet bi ser wan de were?

**67.** Wê rojê hemû dost, dibin dijminên hevdu. Ew mutteqî (yên ji bo Allah/fîsebîlîllah hevaltîya hevdu dikirin) ne tê de.

**68.** Ya îbadên min! Îro ji we re tirs tune û hûn xemgîn jî nabin.

**69.** Ew in ku; îman bi ayetên me anîne û teslîm bûne.

**70.** Hûn û hevjînên xwe wek (ji alî Allah ve) tên ezimandin bikevin cennetê.

**71.** Li ber wan tebeq û qedehên zêrîn tên gerandin. Li wê derê hemû tiştên ku dilên wan dixwaze û çavên wan pê xweş dibe, heye. Hûn ê di wir de bêdawî bimînin.

**72.** Ew cenneta di berdêla amelên we ku hûn jê re bûne waris, ev e.

**73.** Li wê derê, ji bo we gelek fêkîyên ku hûn ê ji wan bixwin hene.

إِنَّ الْمُجْرِمِينَ فِي عَذَابِ جَهَنَّمَ خَالِدُونَ ۚ ﴿٧٤﴾ لَا يُفَتَّرُ عَنْهُمْ وَهُمْ
فِيهِ مُبْلِسُونَ ۚ ﴿٧٥﴾ وَمَا ظَلَمْنَاهُمْ وَلَٰكِنْ كَانُوا هُمُ الظَّالِمِينَ ﴿٧٦﴾
وَنَادَوْا يَا مَالِكُ لِيَقْضِ عَلَيْنَا رَبُّكَ ۖ قَالَ إِنَّكُمْ مَاكِثُونَ ﴿٧٧﴾
لَقَدْ جِئْنَاكُمْ بِالْحَقِّ وَلَٰكِنَّ أَكْثَرَكُمْ لِلْحَقِّ كَارِهُونَ ﴿٧٨﴾
أَمْ أَبْرَمُوا أَمْرًا فَإِنَّا مُبْرِمُونَ ۚ ﴿٧٩﴾ أَمْ يَحْسَبُونَ أَنَّا لَا نَسْمَعُ سِرَّهُمْ
وَنَجْوَاهُمْ ۚ بَلَىٰ وَرُسُلُنَا لَدَيْهِمْ يَكْتُبُونَ ﴿٨٠﴾ قُلْ إِنْ كَانَ لِلرَّحْمَٰنِ
وَلَدٌ فَأَنَا أَوَّلُ الْعَابِدِينَ ﴿٨١﴾ سُبْحَانَ رَبِّ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ
رَبِّ الْعَرْشِ عَمَّا يَصِفُونَ ﴿٨٢﴾ فَذَرْهُمْ يَخُوضُوا وَيَلْعَبُوا حَتَّىٰ
يُلَاقُوا يَوْمَهُمُ الَّذِي يُوعَدُونَ ﴿٨٣﴾ وَهُوَ الَّذِي فِي السَّمَاءِ إِلَٰهٌ
وَفِي الْأَرْضِ إِلَٰهٌ ۚ وَهُوَ الْحَكِيمُ الْعَلِيمُ ﴿٨٤﴾ وَتَبَارَكَ الَّذِي لَهُ مُلْكُ
السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا ۚ وَعِنْدَهُ عِلْمُ السَّاعَةِ ۚ وَإِلَيْهِ
تُرْجَعُونَ ﴿٨٥﴾ وَلَا يَمْلِكُ الَّذِينَ يَدْعُونَ مِنْ دُونِهِ الشَّفَاعَةَ
إِلَّا مَنْ شَهِدَ بِالْحَقِّ وَهُمْ يَعْلَمُونَ ﴿٨٦﴾ وَلَئِنْ سَأَلْتَهُمْ مَنْ خَلَقَهُمْ
لَيَقُولُنَّ اللَّهُ ۖ فَأَنَّىٰ يُؤْفَكُونَ ﴿٨٧﴾ وَقِيلِهِ يَا رَبِّ إِنَّ هَٰؤُلَاءِ قَوْمٌ
لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٨٨﴾ فَاصْفَحْ عَنْهُمْ وَقُلْ سَلَامٌ ۚ فَسَوْفَ يَعْلَمُونَ ﴿٨٩﴾

**74.** Bêşik ew ên mucrîm/sûcdar jî wê di ezabê cehennemê de ebedî bimînin.

**75.** Navber (ji ezabê re) nayê dayîn û (di nava ezabê de) di rewşeke bêhêvî de disekinin.

**76.** Me zilim li wan nekir. Lê wan li xwe bixwe zilim dikirin.

**77.** Wiha dibêjin: "Ya Malik! Rabbê te bila karê/îşê me biqedîne (rohê me bistîne)." (Malik) dibêje: "Bêguman hûn ê (di nava ezabê de) bimînin."

**78.** Sond be me ji we re ya heq anîye. Lê belê pirên we ji heqê ne xoşnûd/ne razî bûn.

**79.** Nexwe wan, karê (dijminahîya pêxember) têr zexm girtine? Bêguman, em jî (karê cezadayinê) zexm digirin.

**80.** Ma qey ew zen dikin tiştên ku vedişêrin û piste pistê dikin em seh nakin? Berevajî, qasidên me/melaîket li cem wan dinivîsin.

**81.** Bibêje: "Eger zarokekî Rahmân hebûna, ez ê (jê re) bibûma pêşîyê perestkaran.
(Eger Allah (ac) ji bo di navbera xwe û evdên xwe de tewassut/navbendî bikin ji xwe re zarok bigirtana; ew ên ku agahîya vê rewşê bidin însanan û bi pêkanîna pêwistîyê wê ew ên ku serê pêşîn de îbadetê li wî za-rokî bikin jî wê pêxember bixwe bibûna. Lewre wezîfeya wan, daxwazên Allah (ac) pêk bînin û rabigihînin însanan. Lê belê Allah (ac) ji tiştekî wisan munezzeh e. Li ser vê mijarê ne kitêbek daxistîye û ne jî ji qasidên xwe re awehîy kiriye. Ev, zen û bêbextîyên nezanan e."

**82.** Rabbê erd û asîman û Rabbê erşê (Allah), ji sifetên ku jê re lihev tînin munezzeh e/berî ye.

**83.** Wan (di halê xwe de) bihêle. Hetanî leqayî ew rojên ku li wan hatine weadkirin bila noqî (kêfê) bibin û pê mijul bibin.

**84.** Îlâhê li esman jî û îlâhê li erdê jî ew e. Ew, (xwedî hikum û hikmet) Hakîm û (zanayê her tiştî) Alîm e.
(Bnr. Îzaha ayetên 6/En'âm, 3 û 11/Hûd, 87.)

**85.** Ew (Allah) ê ku erd û asîman û tiştên di navbera wan de aîdê wî ne, çiqas berz/bilind e. Agahîya qiyametê li cem wî ye û hûn ê bi bal wî ve bên vegerandin.

**86.** Ji xeynî wî ew ên dûa ji wan re dikin, ne xwedîyê rayeya şefaetê ye. Enceq ew ên bizanebûn li ser heqîyê şahidî didin, ne tê de.
(Ev ayet, temasê du heqîqetan dike:
a. Şefaeta ku di Qur'anê de tê nefiykirin û tunebûna wê tê pejirandin, ne mutleq e. Bi tabîra Qur'anê, dibe ku rayeya şefaeta wan kesên ku Allah (ac) destûr daye wan û ji wan razî bûye û bi zanebûn şahidîya heqîyê dikin hebe. (Bnr. 2/Baqara, 255; 19/Meryem, 87; 21/Enbîya, 28) Ligel ve bitenê Allah (ac) dizane ku wê rayeya şefaetê bide kî û wê ji kî razî bibe û wê kî nailê şefaetê bike. Ji vê sedemê şefaet bitenê ji Allah (ac) tê xwestin. (Bnr. 39/Zûmer, 43-44)
b. Şahidîya li heqîyê yanê şahidîya li kelîmeya tewhîdê divê bi zanebûn û li ser ilmê be. "Laîlâheîllallah" a feyde dide kesekî, ew e ku mirov bizanibe çi qebûl dike û çi red dike. (Bnr. 47/Muhammed, 19) )

**87.** Eger ji wan bipirsî: "Kî wan xuliqandîye?" bêşik wê bibêjin: "Allah!" Çawa (ji tewhîdê) bi bal şirkê ve tên vegerandin! (Bnr. 23/Mu'mînûn, 90)

**88.** Gazina wî ya "Rabbê min! Bêguman ev qewmekî wisan in ku îman naynin" jî (Allah dizane.)

**89.** Tu niha ji wan rû vegerîne û bibêje: "Silav!" Pir di nêz de wê bibînin/fêm bikin.

## 44. SÛREYA DÛXÂN

*( Sûreya Dûxân, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pêncî û neh (59) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya çil û çaremîn e. Dûxân, tê ser maneya dû/mij/dûman ku ev kelîme di ayeta 10. de dibore û ev sûre bi vê peyvê hatîye binav kirin. Sûre, bi sonda bi Kitêbê/bi Qur'anê dest pê dike. Ev jî giringîya Kitêbê û ehemmîyeta wehîyê ya di dîn de nişan dide. Mijarên sûreya Dûxân bi gelemperî ev in: Pêwistîya bawerîya bi kitêban û bi pêxemberan (asm), tengezarîya li heyata dinyayê û ezaba li axîretê ya ku kesên kafir bi wan rû bi rû dimînin û bextewarîya bêdawî ya ku mûmîn pê tên mizgînkirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Hâ, Mîm.

**2.** Sond bi vê Kitêba vikîvekirî/raveker be,

**3.** Bêguman me, ew di şeveke pîroz de daxistîye. Muheqeq em, hişyarker in.

**4.** Her karê bi hîkmet (di wê şevê de) tê veqetandin.

**5.** Bi emrekî ji cem me ve (karên ku wê bên kirin diyar dibin û wezîfe belav dibin). Bêşik em (pêxemberan ji însanan re) şandyar in/hinêryar in.

**6.** Rahmeteke ji Rabbê te... Bêguman ew, (yê ku hemû tiştan dibihîze) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm bixwe ye.

**7.** Rabbê erd û esmanan û tiştên di navbera herduyan de ye. Eger hûn bi yeqînî pêbawer in (ev wisan e).

**8.** Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. Divejîne û dimirîne. Rabbê we û Rabbê bavûkalên we yên berê ye.

**9.** (Nexêr,) birastî ew di nava gumanê de xwe pêmijul dikin.

**10.** Di wê rewşê de, tu çavdêrîya wê rojê be ku esman bi dûyekî vikîvekirî tê.

سُورَةُ الدُّخَانِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ تِسْعٌ وَخَمْسُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
حٰمٓ ﴿١﴾ وَالْكِتَابِ الْمُب۪ينِ ﴿٢﴾ اِنَّٓا اَنْزَلْنَاهُ ف۪ي لَيْلَةٍ مُبَارَكَةٍ اِنَّا كُنَّا
مُنْذِر۪ينَ ﴿٣﴾ ف۪يهَا يُفْرَقُ كُلُّ اَمْرٍ حَك۪يمٍ ﴿٤﴾ اَمْرًا مِنْ عِنْدِنَا
اِنَّا كُنَّا مُرْسِل۪ينَ ﴿٥﴾ رَحْمَةً مِنْ رَبِّكَ اِنَّهُ هُوَ السَّم۪يعُ الْعَل۪يمُ ﴿٦﴾
رَبِّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا اِنْ كُنْتُمْ مُوقِن۪ينَ ﴿٧﴾
لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ يُحْي۪ وَيُم۪يتُ رَبُّكُمْ وَرَبُّ اٰبَٓائِكُمُ الْاَوَّل۪ينَ ﴿٨﴾
بَلْ هُمْ ف۪ي شَكٍّ يَلْعَبُونَ ﴿٩﴾ فَارْتَقِبْ يَوْمَ تَأْتِي السَّمَٓاءُ بِدُخَانٍ
مُب۪ينٍ ﴿١٠﴾ يَغْشَى النَّاسَ هٰذَا عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿١١﴾ رَبَّنَا اكْشِفْ عَنَّا
الْعَذَابَ اِنَّا مُؤْمِنُونَ ﴿١٢﴾ اَنّٰى لَهُمُ الذِّكْرٰى وَقَدْ جَٓاءَهُمْ رَسُولٌ
مُب۪ينٌ ﴿١٣﴾ ثُمَّ تَوَلَّوْا عَنْهُ وَقَالُوا مُعَلَّمٌ مَجْنُونٌ ﴿١٤﴾ اِنَّا كَاشِفُوا
الْعَذَابِ قَل۪يلًا اِنَّكُمْ عَٓائِدُونَ ﴿١٥﴾ يَوْمَ نَبْطِشُ الْبَطْشَةَ الْكُبْرٰى
اِنَّا مُنْتَقِمُونَ ﴿١٦﴾ وَلَقَدْ فَتَنَّا قَبْلَهُمْ قَوْمَ فِرْعَوْنَ وَجَٓاءَهُمْ رَسُولٌ
كَر۪يمٌ ﴿١٧﴾ اَنْ اَدُّٓوا اِلَيَّ عِبَادَ اللّٰهِ اِنّ۪ي لَكُمْ رَسُولٌ اَم۪ينٌ ﴿١٨﴾

**11.** Wê însanan binixumîne û dorpêç bike. Ev, ezabekî biêş û jan e.

**12.** "Rabbê me! Ezab ji me biborîne. Bêguman em ji mûmînan in."

**13.** (Piştî ku ev bela hate serê wan) ka wê çawa şîret bigirin? Hal ev e ku ji wan re pêxemberekî vikîvekirî hatibû.

**14.** Paşê jê rû vegerandin û wiha gotin: "Ev dînekî hînkirî ye."

**15.** Em ê demekî kurt ezab ji ser we rakin, (lê) hûn ew in ku, dîsa (bi bal şirkê ve) vegerin.

**16.** Roja bi zeftkirina herî mezin ku em ê zeft bikin, bêguman em tolhildar/heyfsitên in.

**17.** Sond be, me berîya wan de qewmê Fîrewn îmtîhan kiribû. Û ji wan re pêxemberekî birûmet hatibû.

**18.** (Gotibû:) "Wan evdên Allah (Benî Îsraîlîyan) bidin min. Bêguman ez, ji bo we pêxemberekî ewledar im."

وَاَنْ لَا تَعْلُوا عَلَى اللّٰهِۚ اِنّ۪يٓ اٰت۪يكُمْ بِسُلْطَانٍ مُب۪ينٍۚ ﴿١٩﴾ وَاِنّ۪ي عُذْتُ
بِرَبّ۪ي وَرَبِّكُمْ اَنْ تَرْجُمُونِۘ ﴿٢٠﴾ وَاِنْ لَمْ تُؤْمِنُوا ل۪ي فَاعْتَزِلُونِ ﴿٢١﴾
فَدَعَا رَبَّهُٓ اَنَّ هٰٓؤُلَٓاءِ قَوْمٌ مُجْرِمُونَ ﴿٢٢﴾ فَاَسْرِ بِعِبَاد۪ي لَيْلًا
اِنَّكُمْ مُتَّبَعُونَۙ ﴿٢٣﴾ وَاتْرُكِ الْبَحْرَ رَهْوًاۜ اِنَّهُمْ جُنْدٌ مُغْرَقُونَ ﴿٢٤﴾
كَمْ تَرَكُوا مِنْ جَنَّاتٍ وَعُيُونٍۙ ﴿٢٥﴾ وَزُرُوعٍ وَمَقَامٍ كَر۪يمٍۙ ﴿٢٦﴾
وَنَعْمَةٍ كَانُوا ف۪يهَا فَاكِه۪ينَۙ ﴿٢٧﴾ كَذٰلِكَ وَاَوْرَثْنَاهَا
قَوْمًا اٰخَر۪ينَ ﴿٢٨﴾ فَمَا بَكَتْ عَلَيْهِمُ السَّمَٓاءُ وَالْاَرْضُ
وَمَا كَانُوا مُنْظَر۪ينَۚ ﴿٢٩﴾ وَلَقَدْ نَجَّيْنَا بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَ مِنَ الْعَذَابِ
الْمُه۪ينِۙ ﴿٣٠﴾ مِنْ فِرْعَوْنَۜ اِنَّهُ كَانَ عَالِيًا مِنَ الْمُسْرِف۪ينَ ﴿٣١﴾ وَلَقَدِ
اخْتَرْنَاهُمْ عَلٰى عِلْمٍ عَلَى الْعَالَم۪ينَۚ ﴿٣٢﴾ وَاٰتَيْنَاهُمْ مِنَ الْاٰيَاتِ مَا ف۪يهِ
بَلٰٓؤٌا مُب۪ينٌ ﴿٣٣﴾ اِنَّ هٰٓؤُلَٓاءِ لَيَقُولُونَۙ ﴿٣٤﴾ اِنْ هِيَ اِلَّا مَوْتَتُنَا الْاُو۫لٰى
وَمَا نَحْنُ بِمُنْشَر۪ينَ ﴿٣٥﴾ فَاْتُوا بِاٰبَٓائِنَٓا اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ ﴿٣٦﴾
اَهُمْ خَيْرٌ اَمْ قَوْمُ تُبَّعٍۙ وَالَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْۜ اَهْلَكْنَاهُمْۘ اِنَّهُمْ كَانُوا
مُجْرِم۪ينَ ﴿٣٧﴾ وَمَا خَلَقْنَا السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا لَاعِب۪ينَ ﴿٣٨﴾
مَا خَلَقْنَاهُمَٓا اِلَّا بِالْحَقِّ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٣٩﴾




**19.** “Li dij Allah fortên mezinahîyê nekin. Birastî min ji we re delîleke vikîvekirî anî.”

**20.** “Û ji ber (dibetîya/îhtîmala) recimandin û qewirandina we, min xwe sipartîye wî Allahê ku Rabbê min û Rabbê we ye.”

**21.** “Eger hûn îman bi min naynin, ji min dûr bibin.”

**22.** Ji Rabbê xwe re dûa kir: “Bêguman evana, civakekî mucrîm/sûcdar û gunehkar in.”

**23.** (Allah got:) “Bi evdên min re bi şev bi rê bikeve. Hûn ê bên taqîpkirin.”

**24.** “Behrê jî vekirî bihêle. (Ew ên dane pey we) wê di rewşa artêşê de bixeniqin.”

**25.** Wan gelek bexçe û kanîyan terikandin.

**26.** Çandinî û qesrên hêja...

**27.** Û jiyaneke ku bi kêf û xweşî didomandin...

**28.** Herwiha me wan, wek mîras/pêmayî dane qewmekî din.

**29.** Ne esman û ne jî erd li ser wan girîyan û muhlet jî li wan nehate dayîn.

**30.** Sond be me, Benî Îsraîl ji ezabekî riswaker rizgar kir.

**31.** Ji Fîrewn... Bêşik ew, zordarekî fortanîya serdestîyê dikir û ji hedê xwe borî bû.

**32.** Sond be me wan, li ser ilmê ji aleman re serdest girtibû.

**33.** Û me ayetên ku di nava wan de îmtîhaneke eşkere hebû da wan.

**34.** Bêguman evana dibêjin ku...

**35.** “Ev bitenê mirina me ya pêşîn/ewil e û em tu car nayên vejandin.”

**36.** “Eger hûn rast dibêjin de ka bavên me (yên mirî) bînin (em bibînin).”

**37.** Ew bixêrtir in an jî qewmê Tubba? An yên berîya wan? Me ew helak kirin. Lewre ew mucrîm/sûcdar bûn.

**38.** Me erd û esman û tiştên di navbera herduyan de, ne ji bo lîstikê xuliqandîye.

(Ji bo meqseda xuliqandinê bnr. 38/Sâd, 27.)

**39.** Me ewana her bi heqîyê xuliqand. Lê pirên wan nizanin.

اِنَّ يَوْمَ الْفَصْلِ مٖيقَاتُهُمْ اَجْمَعٖينَۙ ﴿٤٠﴾ يَوْمَ لَا يُغْنٖي مَوْلًى
عَنْ مَوْلًى شَيْـًٔا وَلَا هُمْ يُنْصَرُونَۙ ﴿٤١﴾ اِلَّا مَنْ رَحِمَ اللّٰهُۜ اِنَّهُ هُوَ
الْعَزٖيزُ الرَّحٖيمُ ﴿٤٢﴾ اِنَّ شَجَرَتَ الزَّقُّومِۙ ﴿٤٣﴾ طَعَامُ الْاَثٖيمِۚ ﴿٤٤﴾
كَالْمُهْلِۚ يَغْلٖي فِي الْبُطُونِۙ ﴿٤٥﴾ كَغَلْيِ الْحَمٖيمِ ﴿٤٦﴾
خُذُوهُ فَاعْتِلُوهُ اِلٰى سَوَٓاءِ الْجَحٖيمِۗ ﴿٤٧﴾ ثُمَّ صُبُّوا فَوْقَ رَاْسِهٖ
مِنْ عَذَابِ الْحَمٖيمِۜ ﴿٤٨﴾ ذُقْۚ اِنَّكَ اَنْتَ الْعَزٖيزُ الْكَرٖيمُ ﴿٤٩﴾
اِنَّ هٰذَا مَا كُنْتُمْ بِهٖ تَمْتَرُونَ ﴿٥٠﴾ اِنَّ الْمُتَّقٖينَ فٖي مَقَامٍ
اَمٖينٍۙ ﴿٥١﴾ فٖي جَنَّاتٍ وَعُيُونٍۚ ﴿٥٢﴾ يَلْبَسُونَ مِنْ سُنْدُسٍ
وَاِسْتَبْرَقٍ مُتَقَابِلٖينَۚ ﴿٥٣﴾ كَذٰلِكَ۠ وَزَوَّجْنَاهُمْ بِحُورٍ
عٖينٍۜ ﴿٥٤﴾ يَدْعُونَ فٖيهَا بِكُلِّ فَاكِهَةٍ اٰمِنٖينَۙ ﴿٥٥﴾ لَا يَذُوقُونَ
فٖيهَا الْمَوْتَ اِلَّا الْمَوْتَةَ الْاُو۫لٰىۚ وَوَقٰيهُمْ عَذَابَ الْجَحٖيمِۙ ﴿٥٦﴾
فَضْلًا مِنْ رَبِّكَۜ ذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظٖيمُ ﴿٥٧﴾ فَاِنَّمَا يَسَّرْنَاهُ
بِلِسَانِكَ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ ﴿٥٨﴾ فَارْتَقِبْ اِنَّهُمْ مُرْتَقِبُونَ ﴿٥٩﴾

سُورَةُ الْجَاثِيَةِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سَبْعٌ وَثَلَاثُونَ اٰيَةً

**40.** Qet tê de guman tune ku Yewmu'l Fesl/Roja Veqetandinê, dema (vejandina) wan e.

**41.** Wê rojê, dost nikare qet tu feyde bide dostê xwe û alîkarî jî ji wan re nayê kirin.

**42.** Ew ên ku Allah rahmetê li wan kirine ne tê de. Bêguman ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm bixwe ye.

**43.** Bêşik ew dara zeqqum ê,

**44.** Xwarina gunehkaran e.

**45.** Wekî madenê helandî di zikê wan de dikele.

**46.** Wekî pilçînîya/pilçepilça ava kelandî.

**47.** (Wiha tê gotin:) Wî bigirin û bi nîvê cehennemê ve bikişkişînin.

**48.** Paşê ji ezaba ava kelandî di serê wî de birijînin.

**49.** (De heydê, ezab) bitamîne! Kanê (goya) tu pir bi îzzet û bi rûmet bûyî!

**50.** Bêguman ev, ew tişt e ku hûn tê de bi guman ketibûn.

**51.** Bi rastî ew ên mutteqî, di meqamên ewledar de ne.

**52.** Di nava cennetan de û li ser kanîyan.

**53.** Ji libasên hevrîşim ên tenik û sitûr li xwe dikin û bi berhemberî rûdinin.

**54.** Ha wisan... Me wan bi horîyên çavgir (çavxezal) re zewicandin.

**55.** Li wir, di nava ewlehîyê de ji her cureyên fêkîyan dixwazin.

**56.** Li wir, ji mirina pêşîn pê ve ew mirineke din tam nakin. Û (Allah,) wan ji ezabê cehennemê parastîye.

**57.** Wek lutf û îhsaneke ji Rabbê te... Ha ev, rizgarîya/qezenca herî mezin bixwe ye.

**58.** Ji bo ku şîret bigirin me ew (Qur'an) li ser zimanê te hêsan kir.

**59.** (Nexwe) çavnêr be. Ew jî çavnêrîyê dikin.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
حٰمٓ ﴿١﴾ تَنْز۪يلُ الْكِتَابِ مِنَ اللّٰهِ الْعَز۪يزِ الْحَك۪يمِ ﴿٢﴾ اِنَّ فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ لَاٰيَاتٍ لِلْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٣﴾ وَف۪ي خَلْقِكُمْ وَمَا يَبُثُّ مِنْ دَٓابَّةٍ
اٰيَاتٌ لِقَوْمٍ يُوقِنُونَ ﴿٤﴾ وَاخْتِلَافِ الَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ
مِنَ السَّمَٓاءِ مِنْ رِزْقٍ فَاَحْيَا بِهِ الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَا وَتَصْر۪يفِ الرِّيَاحِ
اٰيَاتٌ لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ﴿٥﴾ تِلْكَ اٰيَاتُ اللّٰهِ نَتْلُوهَا عَلَيْكَ بِالْحَقِّ فَبِاَيِّ
حَد۪يثٍ بَعْدَ اللّٰهِ وَاٰيَاتِه۪ يُؤْمِنُونَ ﴿٦﴾ وَيْلٌ لِكُلِّ اَفَّاكٍ اَث۪يمٍ ﴿٧﴾ يَسْمَعُ
اٰيَاتِ اللّٰهِ تُتْلٰى عَلَيْهِ ثُمَّ يُصِرُّ مُسْتَكْبِرًا كَاَنْ لَمْ يَسْمَعْهَا فَبَشِّرْهُ
بِعَذَابٍ اَل۪يمٍ ﴿٨﴾ وَاِذَا عَلِمَ مِنْ اٰيَاتِنَا شَيْـًٔا اتَّخَذَهَا هُزُوًا اُو۬لٰٓئِكَ
لَهُمْ عَذَابٌ مُه۪ينٌ ﴿٩﴾ مِنْ وَرَٓائِهِمْ جَهَنَّمُ وَلَا يُغْن۪ي عَنْهُمْ مَا كَسَبُوا
شَيْـًٔا وَلَا مَا اتَّخَذُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَوْلِيَٓاءَ وَلَهُمْ عَذَابٌ عَظ۪يمٌ ﴿١٠﴾ هٰذَا
هُدًى وَالَّذ۪ينَ كَفَرُوا بِاٰيَاتِ رَبِّهِمْ لَهُمْ عَذَابٌ مِنْ رِجْزٍ اَل۪يمٌ ﴿١١﴾ اَللّٰهُ
الَّذ۪ي سَخَّرَ لَكُمُ الْبَحْرَ لِتَجْرِيَ الْفُلْكُ ف۪يهِ بِاَمْرِه۪ وَلِتَبْتَغُوا
مِنْ فَضْلِه۪ وَلَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿١٢﴾ وَسَخَّرَ لَكُمْ مَا فِي السَّمٰوَاتِ
وَمَا فِي الْاَرْضِ جَم۪يعًا مِنْهُ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ ﴿١٣﴾



## 45. SÛREYA CÂSÎYE

*(Sûreya Câsîye, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sî û heft (37) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya çil û pêncemîn e. Peyva Câsîye, di ayeta 28. de dibore û tê ser maneya çokdayî û wek sûreya Câsîye navê xwe ji vê ayetê girtîye. Wekî wan sûreyên Mekkî yên din di vê sûreyê de jî herî zêde li ser mijara aqîdeya tewhîdê û îmanê hatîye sekinandin. Bi taybetî jî li ser îmana bi axîretê bal tê kişandin. Wekî din ev mijarên hanê jî di sûreyê de tên vegotin: Qûdreta Allah (ac) û giringîya wehîyê û pêwistîya bawerîya wehîye û rewşa kesên vejîna piştî mirinê înkar dikin û roja qiyametê û rewşa mûmîn û kafiran ku ji hêla rûmetê ve qet tu car nabin wekehev.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Hâ, Mîm.

**2.** Nazilkirina Kitêbê ji alîyê/ji hêla (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm ve ye.

**3.** Bêguman di erd û esmanan de ji bo mûmînan ayet (ên ku delaletê wehdanîyet û ezameta wî dikin) hene.

**4.** Di xuliqandina we de û di heyînên li ser rûyê erdê belav bûyî de jî ji bo civakeke bawermend ayet hene.

**5.** Di guhartina şev û rojê de û di rizqa/di barana ku Allah ji esman daxistîye û piştî mirinê erd bi wê vejandîye û di gerandina bayê ji bo civakeke aqilmend ayet hene.

**6.** Ha evana, ayetên Allah in ku em ji te re wek heq dixwînin. Êdî ew piştî (pê ne bawerîya) Allah û ayetên wî, wê bi kîjan peyvê bawerî bînin?

**7.** Xwelî li serê wan kesan be ku pirzêde derew û bêbextîyan dikin û pirzêde gunehkar in!

**8.** Ku ew ayetên Allah yên jê re tên xwendin dibihîze, lê wekî qet seh nekiribe bi fortandina mezinahîyê (di kufra xwe de) asê dimîne. Mizgîna ezabekî biêş û jan bide wî.

**9.** Eger ji ayetên me tiştekî hîn bibe, ew dike mijara tinazê. Ji bo yên wisan ezabekî riswaker heye.

**10.** Li pêşîya wan cehennem (a ku li hêvîya wan e) heye. Tiştên qezenc kirine jî û ew welîyên ji xeynî Allah ku ji xwe re girtine jî feyde nade wan. Ji wan re ezabekî mezin heye.

**11.** Ev (Qur'an,) hîdayet e. Eger ayetên Rabbê xwe înkar bikin ji bo wan ji ya herî giran ezabekî biêş û jan heye.

**12.** Allah e ku; behran ji we re musexer kiriye/xistîye bin emrê we da ku bi fermana wî tê de keştî biherikin biçin û hûn ji lutf û îhsana wî bigerin û jê re şikur bikin.

**13.** Wî (bi lutfeke ji cem xwe) hemû tiştên li erd û esmanan ji we re sitûxwar kir. Bêşik di vê de ji bo civakeke difikirin re ayet hene.

قُلْ لِلَّذٖينَ اٰمَنُوا يَغْفِرُوا لِلَّذٖينَ لَا يَرْجُونَ اَيَّامَ اللّٰهِ لِيَجْزِيَ
قَوْمًا بِمَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿١٤﴾ مَنْ عَمِلَ صَالِحًا فَلِنَفْسِهٖۚ
وَمَنْ اَسَٓاءَ فَعَلَيْهَاۘ ثُمَّ اِلٰى رَبِّكُمْ تُرْجَعُونَ ﴿١٥﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا
بَنٖٓي اِسْرَٓائٖيلَ الْكِتَابَ وَالْحُكْمَ وَالنُّبُوَّةَ وَرَزَقْنَاهُمْ
مِنَ الطَّيِّبَاتِ وَفَضَّلْنَاهُمْ عَلَى الْعَالَمٖينَۚ ﴿١٦﴾ وَاٰتَيْنَاهُمْ بَيِّنَاتٍ
مِنَ الْاَمْرِۚ فَمَا اخْتَلَفُٓوا اِلَّا مِنْ بَعْدِ مَا جَٓاءَهُمُ الْعِلْمُۙ بَغْيًا
بَيْنَهُمْۜ اِنَّ رَبَّكَ يَقْضٖي بَيْنَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ فٖيمَا كَانُوا فٖيهِ
يَخْتَلِفُونَ ﴿١٧﴾ ثُمَّ جَعَلْنَاكَ عَلٰى شَرٖيعَةٍ مِنَ الْاَمْرِ فَاتَّبِعْهَا
وَلَا تَتَّبِعْ اَهْوَٓاءَ الَّذٖينَ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٨﴾ اِنَّهُمْ لَنْ يُغْنُوا عَنْكَ
مِنَ اللّٰهِ شَيْـًٔاۜ وَاِنَّ الظَّالِمٖينَ بَعْضُهُمْ اَوْلِيَٓاءُ بَعْضٍۚ وَاللّٰهُ وَلِيُّ
الْمُتَّقٖينَ ﴿١٩﴾ هٰذَا بَصَٓائِرُ لِلنَّاسِ وَهُدًى وَرَحْمَةٌ لِقَوْمٍ يُوقِنُونَ ﴿٢٠﴾
اَمْ حَسِبَ الَّذٖينَ اجْتَرَحُوا السَّيِّـَٔاتِ اَنْ نَجْعَلَهُمْ كَالَّذٖينَ
اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِۙ سَوَٓاءً مَحْيَاهُمْ وَمَمَاتُهُمْۜ سَٓاءَ
مَا يَحْكُمُونَ ﴿٢١﴾ وَخَلَقَ اللّٰهُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ بِالْحَقِّ
وَلِتُجْزٰى كُلُّ نَفْسٍ بِمَا كَسَبَتْ وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿٢٢﴾

**14.** Ji mûmînan re bibêje: "Bila ew ên ku rojên Allah hêvî nedikirin bibexşînin. Heta ku Allah, berdêla her qewmê ya ku bi dest xistine bide."

**15.** Her kî amelê salih bike, ew di leha wî de ye/jê re baş e. Kî jî xerabî bike, di aleyha wî de ye. Paşê hûn ê bi bal Rabbê xwe ve bên vegerandin.

**16.** Sond be me Kitêb û hukim û nubûwet da Benî Îsraîl. Me ew bi tiştên paqij riziqandin û wan li ser aleman re girt.

**17.** Me ji emrê (bi naverokîya helal û heram ê) delîlên vikîvekirî dane wan. Lê piştî ku ilim ji wan re hat, ji ber harîtî/hesûdî/daxwaza serdestîya li komên din, di navbera xwe de ketin îxtilafê. Rabbê te, roja qiyametê li ser wan mijarên ku tê de ketine îxtîlafê wê di navbera wan de hukmê xwe bide.

**18.** Piştre bi siparteya emr (ê îlâhî) me tu kir xwedî şerîetek. Bibe tabiê wî. Nede pey hewayên/hewesên nezanan.

(Allah (ac), du rê danîye pêşîya însan: An şerîeta ku Allah (ac) daxistîye an jî hewa û hewesên nezanan... Dema ji Allah (ac) re evdîtî dikin ew ên nabin tabiê şerîetê yanê nabin muttebîê Kitêb û Sunnetê, ew tiştê din ku didin pey bi çi binavînin jî ferq nake, di heqîqetê de tabiê hewayên xwe dibin.)

**19.** Bêguman li dij Allah qet tu feydeya wan ji te re tune. Û qet tu guman tune ku ew ên zilimkar dostên hevdu ne. Lê Allah jî dostê/welîyê mutteqîyan e.

**20.** Ev, (Kitêbek e ku) ji bo însanan besîretan (dihewîne) û ji bo mûmînên dilsoz jî hîdayet û rahmet e.

**21.** Nexwe ew ên xerabîyan dikin qey zen dikin ku em ê wan bikin wekî kesên mûmîn û amelê salih dikin û wê jiyan û mirina wan wekehev be? Çi hukmekî xerab didin.

**22.** Allah, erd û esman bi heqî û ji bo ku her nefs berdêla tiştên bi dest xwe xistîye jê re bê dayîn xuliqandîye. Zilim li wan nayê kirin.

اَفَرَاَيْتَ مَنِ اتَّخَذَ اِلٰهَهُ هَوٰيهُ وَاَضَلَّهُ اللّٰهُ عَلٰى عِلْمٍ وَخَتَمَ
عَلٰى سَمْعِهٖ وَقَلْبِهٖ وَجَعَلَ عَلٰى بَصَرِهٖ غِشَاوَةًۜ فَمَنْ يَهْدٖيهِ مِنْ بَعْدِ اللّٰهِۜ
اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ﴿٢٣﴾ وَقَالُوا مَا هِيَ اِلَّا حَيَاتُنَا الدُّنْيَا نَمُوتُ وَنَحْيَا
وَمَا يُهْلِكُنَٓا اِلَّا الدَّهْرُۚ وَمَا لَهُمْ بِذٰلِكَ مِنْ عِلْمٍۚ اِنْ هُمْ اِلَّا يَظُنُّونَ ﴿٢٤﴾
وَاِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ مَا كَانَ حُجَّتَهُمْ اِلَّٓا اَنْ قَالُوا ائْتُوا
بِاٰبَٓائِنَٓا اِنْ كُنْتُمْ صَادِقٖينَ ﴿٢٥﴾ قُلِ اللّٰهُ يُحْيٖيكُمْ ثُمَّ يُمٖيتُكُمْ ثُمَّ
يَجْمَعُكُمْ اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ لَا رَيْبَ فٖيهِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَۚ ﴿٢٦﴾
وَلِلّٰهِ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَيَوْمَ تَقُومُ السَّاعَةُ يَوْمَئِذٍ يَخْسَرُ
الْمُبْطِلُونَ ﴿٢٧﴾ وَتَرٰى كُلَّ اُمَّةٍ جَاثِيَةًۗ كُلُّ اُمَّةٍ تُدْعٰٓى اِلٰى كِتَابِهَاۜ اَلْيَوْمَ
تُجْزَوْنَ مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٢٨﴾ هٰذَا كِتَابُنَا يَنْطِقُ عَلَيْكُمْ بِالْحَقِّۜ
اِنَّا كُنَّا نَسْتَنْسِخُ مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٢٩﴾ فَاَمَّا الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ فَيُدْخِلُهُمْ رَبُّهُمْ فٖي رَحْمَتِهٖۜ ذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْمُبٖينُ ﴿٣٠﴾
وَاَمَّا الَّذٖينَ كَفَرُواۗ اَفَلَمْ تَكُنْ اٰيَاتٖي تُتْلٰى عَلَيْكُمْ فَاسْتَكْبَرْتُمْ وَكُنْتُمْ
قَوْمًا مُجْرِمٖينَ ﴿٣١﴾ وَاِذَا قٖيلَ اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّ وَالسَّاعَةُ لَا رَيْبَ فٖيهَا
قُلْتُمْ مَا نَدْرٖي مَا السَّاعَةُۙ اِنْ نَظُنُّ اِلَّا ظَنًّا وَمَا نَحْنُ بِمُسْتَيْقِنٖينَ ﴿٣٢﴾

**23.** Ma te nedît, ew ê ku hewayê xwe ji xwe re kiriye îlâh û Allah li ser ilmekî ew xerifandîye û gûh û dilê wî mohr kiriye û perde avêtîye ser çavên wî? (Niha) ji Allah pê ve kî dikare ew hîdayet bike? Hûn şîret nagirin?

**24.** Gotin: “(Her tişt) bitenê ji jiyana me ya dinyayê pêkhatî ye. Em dimirin û divejin. Enceq dem/wext/zeman me helak bike.” Li ser vê qet tu agahîya wan tune. Bitenê zen dikin û hew.

**25.** Dema ayetên me yên vikîvekirî ji wan re tên xwendin ji xeynî ku bibêjin: “Eger hûn ji rastbêjan in bavên me (ên mirî) bînin (da ku em bibînin)” pê ve qet tu delîlên wan tune.

**26.** Bibêje: “Allah, we divejîne û paşê dimirîne. Piştre ew roja qiyametê ku tê de qet tu guman tune de wê hûn li hevdu bicivîne. Lê pirên însanan nizanin.”

**27.** Serwerîya/hukimranîya erd û esmanan aîdê Allah e. Roja ku qiyamet rabe, ha wê demê ehlê batil wê bi xusranê bikevin.

**28.** Wê rojê tu her ummetî dibînî ku çokdayî ne. Her ummet bi bal Kitêba xwe ve tê vexwendin (û ji wan re wiha tê gotin:) “Hûn ê îro berdêla amelên xwe bistînin.”

**29.** (Wiha tê gotin:) “Ev, kitêba me ye ku li dij we heqîyê dibêje. Bêguman me, kirinên we dinivîsand.”

**30.** Heçî ew ên îman anîne û amelên salih kirine jî Rabbê wan ewana daxilê rahmeta xwe dike. Ev, rizgarîyeke vikîvekirî bixwe ye.

**31.** Heçî ji kafiran re jî (wiha tê gotin:) “Ayetên min ji we re nehatin xwendin? Ma qey hûn jî ne bibûn ji wan mucrîmên/sûcdarên gunehkar ku fortên mezinahîyê dikirin?”

**32.** Dema ku wiha tê gotin: ada Allah heq e, der heqê qiyametê de qet tu guman tune.” We wiha got: “Qiyamet jî çî ye? Em nizanin. Me enceq gumanekî kir û em li ser yeqînê ne bawer in.”




**33.** (Aqubeta) kirinên wan ên xerab ji bo wan derkete holê û ew (ezab) a ku tinazên xwe pê dikirin hawîrdor wan dorpêç kir.

**34.** Hate gotin: “Çawa ku we leqayîhatina vê roja xwe ji bîr kiribû, em jî îro we (ji ezabê re terk dikin). Sitargeha we cehennem e. Kesekî ku alîkarîya we bike tune.”

**35.** “Ev, ji ber vê ye ku; we tinazên xwe bi ayetên Allah dikir û hûn bi jiyana dinyayê xapîyan e.” Îro ji wê derê nayên derxistin û (ji bo amelên ku Allah pê razî bikin daxwaza wan a vegera dinyayê jî) nayê qebûlkirin.

**36.** Hamd, ji Allah re ye ku ew; Rabbê esmanan û Rabbê erdê û Rabbê aleman e.

**37.** Mezinahî/serwerî/rûmet li erd û esmanan aîdê wî ye. Ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

## 46. SÛREYA AHQÂF

*(Sûreya Ahqâf, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sî û pênc (35) ayet e)*

*Di Qur’anê de sûreya çil û şeşemîn e. Sûre navê xwe ji ayeta 21. distîne. Ahqâf, peyveke pirjimara hiqf e û tê ser maneya loda qûmê ya ku bilind û meyildar e. Hûd (as) dema ku wan bal bi tewhîdê vê dawet dikir qewmê Ad li wê warê cihwar bûn. Di vê sûreyê de rikdarîya kafiran û hin taybetîyên Qur’ana Kerîm û Rasûlullah (ass) tê vegotin û behsa şîreta qencîkarîya ji dê û bav re tê kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Hâ, Mîm.

**2.** Nazilkirina Kitêbê ji alî (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm ve ye.

**3.** Me erd û esman û tiştên di navbera her duyan de enceq bi heq û heta demeke diyarkirî xuliqand. Kafir ew in ku; ji wê tiştê ku pê tên hişyarkirin rû vedigerînin.

وَبَدَا لَهُمْ سَيِّئَاتُ مَا عَمِلُوا وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِهِ يَسْتَهْزِؤُنَ ﴿٣٣﴾
وَقِيلَ الْيَوْمَ نَنْسٰيكُمْ كَمَا نَسِيتُمْ لِقَاءَ يَوْمِكُمْ هٰذَا وَمَاْوٰيكُمُ النَّارُ
وَمَا لَكُمْ مِنْ نَاصِرِينَ ﴿٣٤﴾ ذٰلِكُمْ بِاَنَّكُمُ اتَّخَذْتُمْ اٰيَاتِ اللّٰهِ هُزُوًا
وَغَرَّتْكُمُ الْحَيٰوةُ الدُّنْيَا فَالْيَوْمَ لَا يُخْرَجُونَ مِنْهَا وَلَا هُمْ يُسْتَعْتَبُونَ ﴿٣٥﴾
فَلِلّٰهِ الْحَمْدُ رَبِّ السَّمٰوَاتِ وَرَبِّ الْاَرْضِ رَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿٣٦﴾
وَلَهُ الْكِبْرِيَاءُ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَهُوَ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ ﴿٣٧﴾

سُورَةُ الْاَحْقَافِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسٌ وَثَلَاثُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
حٰمٓ ﴿١﴾ تَنْزِيلُ الْكِتَابِ مِنَ اللّٰهِ الْعَزِيزِ الْحَكِيمِ ﴿٢﴾ مَا خَلَقْنَا السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا اِلَّا بِالْحَقِّ وَاَجَلٍ مُسَمًّى وَالَّذِينَ كَفَرُوا عَمَّا اُنْذِرُوا
مُعْرِضُونَ ﴿٣﴾ قُلْ اَرَاَيْتُمْ مَا تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَرُونِي مَاذَا خَلَقُوا
مِنَ الْاَرْضِ اَمْ لَهُمْ شِرْكٌ فِي السَّمٰوَاتِ اِيتُونِي بِكِتَابٍ مِنْ قَبْلِ هٰذَا
اَوْ اَثَارَةٍ مِنْ عِلْمٍ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿٤﴾ وَمَنْ اَضَلُّ مِمَّنْ يَدْعُوا مِنْ دُونِ
اللّٰهِ مَنْ لَا يَسْتَجِيبُ لَهُ اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ وَهُمْ عَنْ دُعَائِهِمْ غَافِلُونَ ﴿٥﴾

**4.** Bibêje: “Ew ên ji xeynî Allah we dûa li wan dikirin we dît? De nîşanî min bidin ka wan li ser rûyê erdê çi xuliqandine an jî qey hevkarîyeke wan di esmanan de heye? Eger hûn rastbêj in, de ka kitêbeke ku berîya vê (Qur'anê) hatibe an jî berhemekê ji ilmê (pêşîyan) ji min re bînin.

**5.** Ma ew kesê ku dev ji Allah berdide û dûayê wan tiştan dike ku heta qiyametê wê nikaribin îcabetî (dûayên) wî bikin jê rêşaştir kî heye? Ew (ên ku dûa li wan tên kirin) ji wan dûayan bêxeber in.

وَاِذَا حُشِرَ النَّاسُ كَانُوا لَهُمْ اَعْدَٓاءً وَكَانُوا بِعِبَادَتِهِمْ كَافِرِينَ ﴿٦﴾
وَاِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ قَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لِلْحَقِّ
لَمَّا جَٓاءَهُمْۙ هٰذَا سِحْرٌ مُبِينٌۜ ﴿٧﴾ اَمْ يَقُولُونَ افْتَرٰيهُۜ قُلْ
اِنِ افْتَرَيْتُهُ فَلَا تَمْلِكُونَ لِي مِنَ اللّٰهِ شَيْـًٔاۜ هُوَ اَعْلَمُ بِمَا تُفِيضُونَ
فِيهِۜ كَفٰى بِهٖ شَهِيدًا بَيْنِي وَبَيْنَكُمْۜ وَهُوَ الْغَفُورُ الرَّحِيمُ ﴿٨﴾
قُلْ مَا كُنْتُ بِدْعًا مِنَ الرُّسُلِ وَمَٓا اَدْرِي مَا يُفْعَلُ بِي وَلَا بِكُمْۜ
اِنْ اَتَّبِعُ اِلَّا مَا يُوحٰٓى اِلَيَّ وَمَٓا اَنَا اِلَّا نَذِيرٌ مُبِينٌ ﴿٩﴾ قُلْ اَرَاَيْتُمْ
اِنْ كَانَ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ وَكَفَرْتُمْ بِهٖ وَشَهِدَ شَاهِدٌ مِنْ بَنٖٓي اِسْرَٓائِيلَ
عَلٰى مِثْلِهٖ فَاٰمَنَ وَاسْتَكْبَرْتُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الظَّالِمِينَ ﴿١٠﴾
وَقَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لِلَّذِينَ اٰمَنُوا لَوْ كَانَ خَيْرًا مَا سَبَقُونَٓا اِلَيْهِۜ
وَاِذْ لَمْ يَهْتَدُوا بِهٖ فَسَيَقُولُونَ هٰذَٓا اِفْكٌ قَدِيمٌ ﴿١١﴾ وَمِنْ قَبْلِهٖ كِتَابُ
مُوسٰٓى اِمَامًا وَرَحْمَةًۜ وَهٰذَا كِتَابٌ مُصَدِّقٌ لِسَانًا عَرَبِيًّا لِيُنْذِرَ
الَّذِينَ ظَلَمُواۗ وَبُشْرٰى لِلْمُحْسِنِينَ ﴿١٢﴾ اِنَّ الَّذِينَ قَالُوا رَبُّنَا اللّٰهُ
ثُمَّ اسْتَقَامُوا فَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَۚ ﴿١٣﴾ اُو۬لٰٓئِكَ
اَصْحَابُ الْجَنَّةِ خَالِدِينَ فِيهَاۚ جَزَٓاءً بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١٤﴾

**6.** Dema ku însan (tên vejandin û) li hevdu tên civandin, ew (ên dûa li wan dikirin) ji wan re dibin dijmin û perestîya wan înkar dikin.

**7.** Dema ayetên me yên vikîvekirî ji wan re tên xwendin, ew ên kafir ji bo heq a ku ji wan re hatîye re wiha gotin: “Ev sêhrekî vikîvekirî ye.”

**8.** Nexwe wiha dibêjin: “Wî bi lihevanîna wê (Qur'an) îftîra (li Allah) kiriye?” Bibêje: “Eger min ew lihev anîbe wê çaxê (li dij ezaba ku wê ji min re bê) qet tu feydeya we nagihîje min. Ew, bi zêde pê de çûnên we ku hûn dikin çêtir dizane. Di navbera min û we de wek şahid ew bes e. Ew, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**9.** Bibêje: “Ez ne ewilê/pêşîvanên pêxemberan im. Û ez nizanim wê çi ji min ji û ji we bê kirin. Ez bitenê didim pey wehîya ku ji min re hatîye. Ez enceq hişyarkerekî vikîvekirî me.”

**10.** Bibêje: “Ramana we/Fikrê we çiye? (Ka bibêjin?) Eger (ew Qur'an) ji îndallah be û we jî ew înkar kiribe; şahidekî ji Benî Îsraîl li ser menendê/mislê wê şahidî kiribe û îman anîbe û hûn jî bi sêhrê ketibin (di vê rewşê de ji we rêşaştir kî heye)?” Bêguman Allah, qewmê zilimkar hîdayet nake.

**11.** Kafiran ji bo mûmînan gotin: “Eger ew (dîn,) tiştekî bixêrtir bûya evana (di qebûlkirina wê de) nediketin pêşîya me.” Lê ji bo ku ew bi wê negihîştine hîdayetê jî wê bibêjin: “Ev, îftîrayeke/lihevanîneke kevnar e.”

**12.** Berîya wê de bi Kitêba Mûsa jî ku rehber û rahmet e (îman neanîbûn). Ev (Qur'an) jî Kitêbek e ku ji bo ew ên zilimkar hişyar bike û ji muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin re bibe mizgînî û (ji bo ku ji wan kitêbên berîya xwe re) bibe tesdîqkar, bi zimanê Erebî hatîye daxistin.

**13.** Bêguman, ew ên piştî ku gotine: “Rabbê me Allah e” û li ser îstîqametê sebat kirine, ji wan re tirs tune û ew xemgîn jî nabin.

**14.** Ew, ehlê cennetê ne û wek berdêla amelên xwe wê di wir de ebedî dimînin.

وَوَصَّيْنَا الْاِنْسَانَ بِوَالِدَيْهِ اِحْسَانًاۜ حَمَلَتْهُ اُمُّهُ كُرْهًا وَوَضَعَتْهُ
كُرْهًاۜ وَحَمْلُهُ وَفِصَالُهُ ثَلٰثُونَ شَهْرًاۜ حَتّٰٓى اِذَا بَلَغَ اَشُدَّهُ وَبَلَغَ
اَرْبَعِينَ سَنَةًۙ قَالَ رَبِّ اَوْزِعْنِٓي اَنْ اَشْكُرَ نِعْمَتَكَ الَّتِٓي اَنْعَمْتَ
عَلَيَّ وَعَلٰى وَالِدَيَّ وَاَنْ اَعْمَلَ صَالِحًا تَرْضٰيهُ وَاَصْلِحْ لِي فِي ذُرِّيَّتِيۚ
اِنِّي تُبْتُ اِلَيْكَ وَاِنِّي مِنَ الْمُسْلِمِينَ ﴿١٥﴾ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذِينَ نَتَقَبَّلُ
عَنْهُمْ اَحْسَنَ مَا عَمِلُوا وَنَتَجَاوَزُ عَنْ سَيِّـَٔاتِهِمْ فِٓي اَصْحَابِ الْجَنَّةِۜ
وَعْدَ الصِّدْقِ الَّذِي كَانُوا يُوعَدُونَ ﴿١٦﴾ وَالَّذِي قَالَ لِوَالِدَيْهِ
اُفٍّ لَكُمَٓا اَتَعِدَانِنِٓي اَنْ اُخْرَجَ وَقَدْ خَلَتِ الْقُرُونُ مِنْ قَبْلِي وَهُمَا
يَسْتَغِيثَانِ اللّٰهَ وَيْلَكَ اٰمِنْۗ اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّۚ فَيَقُولُ مَا هٰذَٓا
اِلَّٓا اَسَاطِيرُ الْاَوَّلِينَ ﴿١٧﴾ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذِينَ حَقَّ عَلَيْهِمُ الْقَوْلُ فِٓي اُمَمٍ قَدْ
خَلَتْ مِنْ قَبْلِهِمْ مِنَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِۜ اِنَّهُمْ كَانُوا خَاسِرِينَ ﴿١٨﴾
وَلِكُلٍّ دَرَجَاتٌ مِمَّا عَمِلُواۚ وَلِيُوَفِّيَهُمْ اَعْمَالَهُمْ وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿١٩﴾
وَيَوْمَ يُعْرَضُ الَّذِينَ كَفَرُوا عَلَى النَّارِۜ اَذْهَبْتُمْ طَيِّبَاتِكُمْ
فِي حَيَاتِكُمُ الدُّنْيَا وَاسْتَمْتَعْتُمْ بِهَاۚ فَالْيَوْمَ تُجْزَوْنَ عَذَابَ الْهُونِ بِمَا
كُنْتُمْ تَسْتَكْبِرُونَ فِي الْاَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّ وَبِمَا كُنْتُمْ تَفْسُقُونَ ﴿٢٠﴾

**15.** Ji bo dê û bavên wan me şîret li însan kir (da ku bi qencî bi wan re muamele bikin). Dêya wî ew bi gelek zehmetîyan hilgirt û ew bi meşeqet welidand. Hilgirtina wî (ya hemîletîyê de) û veqetana wî (ya ji şîr) sî meh/heyv e. Axir dema ku gihîya û bû çil salî got: “Rabbê min! Îlhamê bide/min muwefeq bike ku ez ji wan nîmetên te daye min û dê û bavê min re şikur bikim. Zurîyeta min jî ji bo min isleh bike. Bêşik min ji te re tobe kir û ez ji muslîman im/ji evdên ku şirkê terk kirine û berê xwe bi tewhîdê dane Allah (yek ji wan) im.”

**16.** Ha evana kesên wisan in ku, em amelên wan ên xweşik qebûl dikin û gunehên wan dibexşînin û ew di nava ehlê cennetê de ne. (Ev,) ehda/soza rastîyê ya ku ji wan re hatibû weadkirin e.

**17.** Ew kesê ku ji dê û bavê xwe re dibêje: “Of ji we re! Digel ku berîya min gelek nifş/nesil hatine û çûne (û tu kes ji wan ji gorê dernehatine) ma hûn bi (vejandin û) derketina ji gorê min tehdît dikin? (Dê û bavê wî) alîkarî ji Allah xwestin û gotin: “Xwelî li serê te be, îman bîne. Bêguman weada Allah heq e.” Lê wî wiha got: “Ev, bitenê çîrokên pêşîyan e.”

**18.** Evana ew kes in; wekî ku ji nava cin û însanan ummetên berîya wan, ezab li ser wan jî heq bûye. Bêşik ew, bi xusranê ketine.

**19.** Ji bo her yek ji wan (di berdêla) amelên wan de mertebeyên wan hene. Heta ku amelên wan wê ji wan re bêkêmasî bê dayîn û neheqî li wan nayê kirin.

**20.** Wê roja ku wê kafir ji agir re bên rapêşkirin (ji wan re tê gotin:) “We di jiyana xwe ya dinyayê de hemû xweşî zayî kir/qedand û hûn jê sûdmend bûn û we kêf kir. Lê belê ji bo ku we li ser rûyê erdê bi neheqî quretî dikir û ji ber fasiqtîya we hûn ê îro bi ezabekî riswaker bên cezakirin.”

وَاذْكُرْ اَخَا عَادٍۜ اِذْ اَنْذَرَ قَوْمَهُ بِالْاَحْقَافِ وَقَدْ خَلَتِ النُّذُرُ
مِنْ بَيْنِ يَدَيْهِ وَمِنْ خَلْفِهٖٓ اَلَّا تَعْبُدُٓوا اِلَّا اللّٰهَۜ اِنّٖٓي اَخَافُ عَلَيْكُمْ
عَذَابَ يَوْمٍ عَظٖيمٍ ﴿٢١﴾ قَالُٓوا اَجِئْتَنَا لِتَاْفِكَنَا عَنْ اٰلِهَتِنَاۚ فَاْتِنَا
بِمَا تَعِدُنَٓا اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِقٖينَ ﴿٢٢﴾ قَالَ اِنَّمَا الْعِلْمُ عِنْدَ اللّٰهِۘ
وَاُبَلِّغُكُمْ مَٓا اُرْسِلْتُ بِهٖ وَلٰكِنّٖٓي اَرٰيكُمْ قَوْمًا تَجْهَلُونَ ﴿٢٣﴾
فَلَمَّا رَاَوْهُ عَارِضًا مُسْتَقْبِلَ اَوْدِيَتِهِمْۙ قَالُوا هٰذَا عَارِضٌ
مُمْطِرُنَاۜ بَلْ هُوَ مَا اسْتَعْجَلْتُمْ بِهٖۜ رٖيحٌ فٖيهَا عَذَابٌ اَلٖيمٌۙ ﴿٢٤﴾
تُدَمِّرُ كُلَّ شَيْءٍ بِاَمْرِ رَبِّهَا فَاَصْبَحُوا لَا يُرٰٓى اِلَّا مَسَاكِنُهُمْۜ
كَذٰلِكَ نَجْزِي الْقَوْمَ الْمُجْرِمٖينَ ﴿٢٥﴾ وَلَقَدْ مَكَّنَّاهُمْ فٖيمَٓا
اِنْ مَكَّنَّاكُمْ فٖيهِ وَجَعَلْنَا لَهُمْ سَمْعًا وَاَبْصَارًا وَاَفْـِٔدَةًۘ فَمَٓا اَغْنٰى
عَنْهُمْ سَمْعُهُمْ وَلَٓا اَبْصَارُهُمْ وَلَٓا اَفْـِٔدَتُهُمْ مِنْ شَيْءٍ اِذْ كَانُوا
يَجْحَدُونَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِهٖ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٢٦﴾
وَلَقَدْ اَهْلَكْنَا مَا حَوْلَكُمْ مِنَ الْقُرٰى وَصَرَّفْنَا الْاٰيَاتِ لَعَلَّهُمْ
يَرْجِعُونَ ﴿٢٧﴾ فَلَوْلَا نَصَرَهُمُ الَّذٖينَ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ قُرْبَانًا
اٰلِهَةًۜ بَلْ ضَلُّوا عَنْهُمْۚ وَذٰلِكَ اِفْكُهُمْ وَمَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ﴿٢٨﴾

**21.** Birayê (qewmê) Ad (Hûd) jî bi bîr bîne ku wî, qewmê xwe li (cihê ku jê re tê gotin) Ahqâf de hişyar kiribû. Bêşik berîya wî û piştî wî jî gelek hişyarker hatibûn û çûbûn (û wiha gotibûn) "Ji Allah pê ve ji kesekî din re îbadet nekin. Bêguman ez, ji bo we ji ezaba rojeke mezin ditirsim."

**22.** Gotin: "Ma ji bo ku tu me (bi derewên xwe) ji îlâhên me dûr bikî ji me re hatî? Eger tu di gotina xwe de rast î, de ka (ezab) a ku tu me pê ditirsînî bîne (em bibînin)."

**23.** Got: "Agahî (ya li ser dema hatina ezabê) li îndallah/li cem Allah e. Ez ew (heqîqet) ên ku pê hatime şandin ji we re radigihînim/teblîx dikim. Lê belê ez we, wek qewmekî ku xwe li cahiltîyê datînin, dibînim."

**24.** Çi dema wan ew (ezab) weke ewrekî dîtin ku berê xwe dabû ser newalên wan (di nav kêfxweşîyê de) gotin: "Ev ewrek e dê baranê li ser me bibarîne." (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî ew, (ezab) a ku we lezgînîya hatina wî dikir e. Ew bayek e ku di navê de ezabeke biêş û jan heye...

**25.** Bi emrê Rabbê te her tiştî serûbinî hev/tarûmar dike. Wisan ku; ji xanîyên ku tê de rudiniştin pê ve tiştek xuya nebû. Em, qewmê mucrîm/sûcdar ên gunehkar ha wisan ceza dikin.

**26.** Sond be, hêza/desthilatdarîya/îmkanên ku ji we re nehatîye dayîn, me dabû wan. Me gûh û çav û qelban dabû wan. Ne guhên wan û ne çavên wan û ne jî qelbên wan qet tu feyde neda wan. Lewre wan ayetên Allah înkar dikirin. Û ew (ezab) a ku tinazên xwe pê dikirin, hawîrdor ew dorpêç kir.

**27.** Sond be, me pirên belde/şar ên derdora we helak kirin. Ji bo ku (bi bal heqqê ve) bizîvirin me ayetan bi awayên pircure beyan kir.

**28.** Ma ne hewce bû ew heyînên (ji bo ku wan nêzîkî Allah) bikin ji xeynî Allah ji xwe re wek îlâh girtibûn, alîkarîya wan bikirana? Berevajî, ew (di dema ezabê de) ji ber wan winda bûn çûn. Ev îdîaya wan (ku dibêjin îlâhên wan alîkarîyê dikin), derew û bêbextîyên wan e.

وَاِذْ صَرَفْنَٓا اِلَيْكَ نَفَرًا مِنَ الْجِنِّ يَسْتَمِعُونَ الْقُرْاٰنَۚ فَلَمَّا حَضَرُوهُ
قَالُٓوا اَنْصِتُواۚ فَلَمَّا قُضِيَ وَلَّوْا اِلٰى قَوْمِهِمْ مُنْذِر۪ينَ ﴿٢٩﴾ قَالُوا
يَا قَوْمَنَٓا اِنَّا سَمِعْنَا كِتَابًا اُنْزِلَ مِنْ بَعْدِ مُوسٰى مُصَدِّقًا لِمَا بَيْنَ
يَدَيْهِ يَهْد۪ٓي اِلَى الْحَقِّ وَاِلٰى طَر۪يقٍ مُسْتَق۪يمٍ ﴿٣٠﴾ يَا قَوْمَنَٓا اَج۪يبُوا
دَاعِيَ اللّٰهِ وَاٰمِنُوا بِه۪ يَغْفِرْ لَكُمْ مِنْ ذُنُوبِكُمْ وَيُجِرْكُمْ
مِنْ عَذَابٍ اَل۪يمٍ ﴿٣١﴾ وَمَنْ لَا يُجِبْ دَاعِيَ اللّٰهِ فَلَيْسَ بِمُعْجِزٍ فِي الْاَرْضِ
وَلَيْسَ لَهُ مِنْ دُونِه۪ٓ اَوْلِيَٓاءُۜ اُو۬لٰٓئِكَ ف۪ي ضَلَالٍ مُب۪ينٍ ﴿٣٢﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا
اَنَّ اللّٰهَ الَّذ۪ي خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَلَمْ يَعْيَ بِخَلْقِهِنَّ بِقَادِرٍ
عَلٰٓى اَنْ يُحْيِيَ الْمَوْتٰىۜ بَلٰٓى اِنَّهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿٣٣﴾ وَيَوْمَ يُعْرَضُ
الَّذ۪ينَ كَفَرُوا عَلَى النَّارِۜ اَلَيْسَ هٰذَا بِالْحَقِّۜ قَالُوا بَلٰى وَرَبِّنَاۜ قَالَ
فَذُوقُوا الْعَذَابَ بِمَا كُنْتُمْ تَكْفُرُونَ ﴿٣٤﴾ فَاصْبِرْ كَمَا صَبَرَ اُو۬لُوا الْعَزْمِ
مِنَ الرُّسُلِ وَلَا تَسْتَعْجِلْ لَهُمْۜ كَاَنَّهُمْ يَوْمَ يَرَوْنَ مَا يُوعَدُونَۙ
لَمْ يَلْبَثُٓوا اِلَّا سَاعَةً مِنْ نَهَارٍۜ بَلَاغٌۚ فَهَلْ يُهْلَكُ اِلَّا الْقَوْمُ الْفَاسِقُونَ ﴿٣٥﴾

سُورَةُ مُحَمَّدٍ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانٍ وَثَلَاثُونَ اٰيَةً

**29.** Wê demê me berê komek cin dabû te û wan li Qur'anê guhdarî dikirin. Dema ku hatin (nav cîvata ku Qur'an) tê xwendin (ji hev re) gotin: “Hiş bin!” Dema ku (xwendina wê) qedîya, ew bi hişyarkerî bi bal qewmê xwe ve vegerîyan.

**30.** Gotin: “Gelî qewmê me! Bi rastî me li kitêbekê guhdarî kir ku ew; piştî Mûsa hatîye daxistin û kitêbên berîya xwe tesdîq dike û gazî heqîyê û rêya rasterast dike.”

**31.** “Gelî qewmê me! Îcabetî dawetvanê Allah bikin û îman pê bînin da ku gunehên we bibexşîne û we ji ezabê biêş û jan biparêze.”

**32.** “Kî jî îcabetî dawetvanê Allah neke ew, dê nikaribe li ser rûyê erdê (Allah) aciz bihêle. Û ji bo wî ji xeynî Allah welî/dost jî tunin. Evana di nava rêşaşîtîyeke vikîvekirî de ne.”

**33.** Ma ew nabînin ew Allahê ku di ber xuliqandina erd û esmanan de newestîyaye, qadir e ku mirîyan jî bivejîne? Erê, bêguman ew li ser her tiştî qadir e.

**34.** Roja ku kafir ji agir re tên rapêşkirin (ji wan re tê gotin:) “Ma ev, ne rast/ne heq bû?” (Ew jî dibêjin:) “Belê, Sond bi Rabbê me ku (rast e/heq e).” Bibêje: “De ji ber kafirbûna xwe ezabê bitamînin (em binêrin).”

**35.** Tu jî wekî wan pêxemberên Ulu'l-Azm sebir bike! Ji bo (ku ji wan re ezab were) nelezîne. Roja ew (ezab) a ku pê hatibûn tehdîtkirin dibînin, ji wan weye ku ew tenê bi qasî seatekî rojê (li dinyayê) mane. (Ev,) teblîxek e/dazanînek e. Erê ma ji qewmekî fasiq pê ve kes tê helakkirin?

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
اَلَّذ۪ينَ كَفَرُوا وَصَدُّوا عَنْ سَب۪يلِ اللّٰهِ اَضَلَّ اَعْمَالَهُمْ ﴿١﴾ وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ وَاٰمَنُوا بِمَا نُزِّلَ عَلٰى مُحَمَّدٍ وَهُوَ الْحَقُّ مِنْ رَبِّهِمْۙ
كَفَّرَ عَنْهُمْ سَيِّـَٔاتِهِمْ وَاَصْلَحَ بَالَهُمْ ﴿٢﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا اتَّبَعُوا
الْبَاطِلَ وَاَنَّ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا اتَّبَعُوا الْحَقَّ مِنْ رَبِّهِمْۜ كَذٰلِكَ يَضْرِبُ اللّٰهُ
لِلنَّاسِ اَمْثَالَهُمْ ﴿٣﴾ فَاِذَا لَق۪يتُمُ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا فَضَرْبَ الرِّقَابِۜ حَتّٰٓى
اِذَٓا اَثْخَنْتُمُوهُمْ فَشُدُّوا الْوَثَاقَۙ فَاِمَّا مَنًّا بَعْدُ وَاِمَّا فِدَٓاءً حَتّٰى تَضَعَ
الْحَرْبُ اَوْزَارَهَاۚ ذٰلِكَۜ وَلَوْ يَشَٓاءُ اللّٰهُ لَانْتَصَرَ مِنْهُمْۙ وَلٰكِنْ لِيَبْلُوَا
بَعْضَكُمْ بِبَعْضٍۜ وَالَّذ۪ينَ قُتِلُوا ف۪ي سَب۪يلِ اللّٰهِ فَلَنْ يُضِلَّ اَعْمَالَهُمْ ﴿٤﴾
سَيَهْد۪يهِمْ وَيُصْلِحُ بَالَهُمْۚ ﴿٥﴾ وَيُدْخِلُهُمُ الْجَنَّةَ عَرَّفَهَا لَهُمْ ﴿٦﴾
يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوٓا اِنْ تَنْصُرُوا اللّٰهَ يَنْصُرْكُمْ وَيُثَبِّتْ اَقْدَامَكُمْ ﴿٧﴾
وَالَّذ۪ينَ كَفَرُوا فَتَعْسًا لَهُمْ وَاَضَلَّ اَعْمَالَهُمْ ﴿٨﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ كَرِهُوا
مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ فَاَحْبَطَ اَعْمَالَهُمْ ﴿٩﴾ اَفَلَمْ يَس۪يرُوا فِي الْاَرْضِ فَيَنْظُرُوا كَيْفَ
كَانَ عَاقِبَةُ الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْۜ دَمَّرَ اللّٰهُ عَلَيْهِمْۘ وَلِلْكَافِر۪ينَ اَمْثَالُهَا ﴿١٠﴾
ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ مَوْلَى الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَاَنَّ الْكَافِر۪ينَ لَا مَوْلٰى لَهُمْ ﴿١١﴾

## 47. SÛREYA MUHAMMED

*(Sûreya Muhammed, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û sî û heşt (38) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya çil û heftemîn e. Sûre, navê xwe ji peyva "Muhammed" ku di ayeta duyemîn de dibore sitendîye û wek sûreya Muhammed hatîye navandin. Sûre di naveroka xwe de mijarên rewşa mûmînan û kafiran û hîcretê vedibêje. Li ser mijara dema pêdivîyê de çarenîna şera bi muşrîkan re disekine. Ji ber vê yeke wek "Sûreya Qîtal/Şer" jî hatîye binav kirin. Behsa tehlîlên/analîzên derûnîya munafiqan jî dike. Ligel vê giringîyê dide vê mijarê ku; kesên mûmîn ji bo civaka îslamê biparêzin û berztir bikin divê bi mal û canên xwe xebat û xizmet bikin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** (Allah,) amelê wan kesên ku bûne kafir û rêya Allah ji ber însanan digirin pûç dike.

**2.** Xerabîyên wan ên îman anîne û amelên salih kirine û bi ya ku ji Muhammed re nazil bûye -ku ew heq e û ji Rabbê wan hatîye- îman anîne dinixûmîne û (hest û ramanên wan jî tê de) hemû rewşên



wan isleh dike.

**4.** Dema hûn di şer de leqayî kafiran hatin, li sitûyên wan bixin. Gava ku we muqawemeta wan şikand û hûn bi ser ketin, bendika/qeyda (yên dîl/êsîr) zexm girêdin. Piştî vê, êdî hûn dixwazin bi qencî wan berdin an jî fidyê ji wan bistînin û hêj wan berdin. Hetanî ku şer giranîyên xwe berde (û biqede) bi vê awayê muamele bikin. Ha wisan... Eger Allah bixwesta dikaribû (bi helakkirina wan) tol/heyf ji wan sitendibana. Lê ji bo ku hin ji we bi hinên din îmtîhan bike (emrê cîhadê kir). Ew kesên di rêya wî de hatine kuştin, wê Allah amelên wan zayî/winda neke.

**5.** Dê wan bigihîjîne hîdayetê û rewşa wan bitevahî isleh bike.

**6.** Û dê wan bixe wê cenneta ku (li dinyayê) bi wan dabû naskirin.

**7.** Gelî ew ên îman anîne! Eger hûn alîkarîya Allah bikin, (wê Allah jî) alîkarîya we bike û wê pîyên/lingên we qayîm bike.

**8.** Heçî ew ên kafir jî Allah wan helak bike/heqê wan helak e. Amelên wan jî pûç/betal kiriye.

**9.** Ev, ji ber ku wan tiştên ku Allah nazil kiriye kerîh didîtin (xweş nedîtine). (Allah) amelên wan pûç/betal kirin.

**10.** Ma qey ew li ser rûyê erdê nagerin ku bibînin ka aqûbeta wan ên berîya wan de (jîyîne) çawa bûye? Allah ew serûbinî hev kirin. Ji kafiran re jî (encameke) wekî wê heye.

**11.** Lewre Allah, welîyê/dostê mûmînan e. Lê dostên kafiran tune.

إِنَّ اللّٰهَ يُدْخِلُ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ جَنَّاتٍ تَجْرِي
مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ وَالَّذِينَ كَفَرُوا يَتَمَتَّعُونَ وَيَاْكُلُونَ كَمَا تَاْكُلُ
الْاَنْعَامُ وَالنَّارُ مَثْوًى لَهُمْ ١٢ وَكَاَيِّنْ مِنْ قَرْيَةٍ هِيَ اَشَدُّ قُوَّةً
مِنْ قَرْيَتِكَ الَّتِي اَخْرَجَتْكَ اَهْلَكْنَاهُمْ فَلَا نَاصِرَ لَهُمْ ١٣ اَفَمَنْ كَانَ
عَلٰى بَيِّنَةٍ مِنْ رَبِّهِ كَمَنْ زُيِّنَ لَهُ سُوءُ عَمَلِهِ وَاتَّبَعُوا اَهْوَاءَهُمْ ١٤
مَثَلُ الْجَنَّةِ الَّتِي وُعِدَ الْمُتَّقُونَ فِيهَا اَنْهَارٌ مِنْ مَاءٍ غَيْرِ اٰسِنٍ وَاَنْهَارٌ
مِنْ لَبَنٍ لَمْ يَتَغَيَّرْ طَعْمُهُ وَاَنْهَارٌ مِنْ خَمْرٍ لَذَّةٍ لِلشَّارِبِينَ وَاَنْهَارٌ
مِنْ عَسَلٍ مُصَفًّى وَلَهُمْ فِيهَا مِنْ كُلِّ الثَّمَرَاتِ وَمَغْفِرَةٌ مِنْ رَبِّهِمْ
كَمَنْ هُوَ خَالِدٌ فِي النَّارِ وَسُقُوا مَاءً حَمِيمًا فَقَطَّعَ اَمْعَاءَهُمْ ١٥ وَمِنْهُمْ
مَنْ يَسْتَمِعُ اِلَيْكَ حَتّٰى اِذَا خَرَجُوا مِنْ عِنْدِكَ قَالُوا لِلَّذِينَ اُوتُوا
الْعِلْمَ مَاذَا قَالَ اٰنِفًا اُولٰٓئِكَ الَّذِينَ طَبَعَ اللّٰهُ عَلٰى قُلُوبِهِمْ وَاتَّبَعُوا
اَهْوَاءَهُمْ ١٦ وَالَّذِينَ اهْتَدَوْا زَادَهُمْ هُدًى وَاٰتٰيهُمْ تَقْوٰيهُمْ ١٧ فَهَلْ
يَنْظُرُونَ اِلَّا السَّاعَةَ اَنْ تَاْتِيَهُمْ بَغْتَةً فَقَدْ جَاءَ اَشْرَاطُهَا فَاَنّٰى لَهُمْ
اِذَا جَاءَتْهُمْ ذِكْرٰيهُمْ ١٨ فَاعْلَمْ اَنَّهُ لَا اِلٰهَ اِلَّا اللّٰهُ وَاسْتَغْفِرْ لِذَنْبِكَ
وَلِلْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مُتَقَلَّبَكُمْ وَمَثْوٰيكُمْ ١٩

**12.** Bêguman Allah, ew ên îman anîne û amelên salih kirine têxe cennetên ku di binî de çem diherikin. Ew ên kafir jî li kêfa xwe dinêrin û wekî heywanan dixwin (û vedixwin). Agir, ji bo wan cihwar e.

**13.** Gelek xelkê beldeyan hebûn ku ji qewmê ku te (ji Mekkeyê) derxistine pirzêdetir bi hêz bûn, me ew helak kirin. Ji bo wan kesekî alîkar jî nebû.

**14.** Ew kesê ku li ser delîlek ji Rabbê xwe be, qet dibe wekî wî kesî ku amelê wî yê xerab jê re hatîye xemilandin û didin pey hewayên/hewesên xwe?

**15.** Mîsala wê cenneta ku ji mutteqîyan re hatîye wead kirin wiha ye: Li wê derê çemên avê ku genî nabe û çemên şîr ku tama wê neguherîye û çemên şerabê ku ji yên vedixwin re lezzetê dide û çemên hingiva helandî ya sefandî heye. Li wê derê ji wan re ji her cureyên fêkî û mexfîretek ji Rabbê wan heye. Ma (yekî ku bi vê awayê xelasbûyî ye) dibe weke wî kesê ku di cehennemê de bêdawî dimîne û bi aveke kelandî tê avdan ku ew av rûvîyên wî parçe parçe dike?

**16.** Ji wan hin jî li te guhdarî dikin. Dema ji cem te derdikevin jî ji wan ên xwedî ilim re wiha dibêjin: "Wî, berî niha çi got?" Evana, ew kes in ku Allah qelbê wan mohr kiriye û ew tabiê hewayên/hewesên xwe dibin.

**17.** Ew ên ehlê hîdayetê jî (Allah) hîdayeta wan zêdetir kiriye û teqwa daye wan.

**18.** Ma ew ji hatina qiyametê ku ji nîşka ve bi ser wan de bigire pê ve li hêvîya tiştekî din in? Ha va, elametên wê hatine. Dema ku qiyamet bi serê wan de bê wê çawa şîret bigirin?

**19.** Tu jî bizanibe ku bêguman ji Allah pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. Ji bo gunehên xwe û ji bo (gunehên) mêr û jinên mûmîn mexfîretê bixwaze. Allah, bi cihê gera we jî û cihê vehewîna we jî dizane.

(Ew Kelîmeya Tewhîdê ku li dinyayê û li axîretê feyde dide mirov; ya ku li ser ilmê tê gotin û bi fêmbarî ka çi tê qebûlkirin û çi tê redkirin bê zanîn e. Rasûlullah (ass) wiha qotîye: "Her kî li ser zanîna ku ji Allah pê ve qet tu îlâh tune bimire, dê bikeve cennetê." (Muslîm, 26; Ahmed, 464) Ji bo gotina Kelîmeya Tewhîdê ya li ser ilmê bnr. 1/Fatîhe, 5; 2/Baqara, 256; 3/ Âl-î Îmran, 64; 12/Yûsuf, 40; 21/Enbîyâ, 25)

وَيَقُولُ الَّذٖينَ اٰمَنُوا لَوْلَا نُزِّلَتْ سُورَةٌۚ فَاِذَٓا اُنْزِلَتْ سُورَةٌ
مُحْكَمَةٌ وَذُكِرَ فٖيهَا الْقِتَالُۙ رَاَيْتَ الَّذٖينَ فٖى قُلُوبِهِمْ
مَرَضٌ يَنْظُرُونَ اِلَيْكَ نَظَرَ الْمَغْشِيِّ عَلَيْهِ مِنَ الْمَوْتِۜ
فَاَوْلٰى لَهُمْۚ ﴿٢٠﴾ طَاعَةٌ وَقَوْلٌ مَعْرُوفٌ فَاِذَا عَزَمَ الْاَمْرُ
فَلَوْ صَدَقُوا اللّٰهَ لَكَانَ خَيْرًا لَهُمْۚ ﴿٢١﴾ فَهَلْ عَسَيْتُمْ اِنْ
تَوَلَّيْتُمْ اَنْ تُفْسِدُوا فِى الْاَرْضِ وَتُقَطِّعُوٓا اَرْحَامَكُمْ ﴿٢٢﴾
اُو۬لٰٓئِكَ الَّذٖينَ لَعَنَهُمُ اللّٰهُ فَاَصَمَّهُمْ وَاَعْمٰٓى اَبْصَارَهُمْ ﴿٢٣﴾
اَفَلَا يَتَدَبَّرُونَ الْقُرْاٰنَ اَمْ عَلٰى قُلُوبٍ اَقْفَالُهَا ﴿٢٤﴾
اِنَّ الَّذٖينَ ارْتَدُّوا عَلٰٓى اَدْبَارِهِمْ مِنْ بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُمُ
الْهُدَىۙ الشَّيْطَانُ سَوَّلَ لَهُمْۜ وَاَمْلٰى لَهُمْ ﴿٢٥﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ
قَالُوا لِلَّذٖينَ كَرِهُوا مَا نَزَّلَ اللّٰهُ سَنُطٖيعُكُمْ فٖى بَعْضِ الْاَمْرِۚ
وَاللّٰهُ يَعْلَمُ اِسْرَارَهُمْ ﴿٢٦﴾ فَكَيْفَ اِذَا تَوَفَّتْهُمُ الْمَلٰٓئِكَةُ
يَضْرِبُونَ وُجُوهَهُمْ وَاَدْبَارَهُمْ ﴿٢٧﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمُ اتَّبَعُوا
مَٓا اَسْخَطَ اللّٰهَ وَكَرِهُوا رِضْوَانَهُ فَاَحْبَطَ اَعْمَالَهُمْ ﴿٢٨﴾
اَمْ حَسِبَ الَّذٖينَ فٖى قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ اَنْ لَنْ يُخْرِجَ اللّٰهُ اَضْغَانَهُمْ ﴿٢٩﴾

**20.** Ew ên mûmîn dibêjin: “De bila der heqê (hukim û xêra cîhadê de) sûreyek daketa!” Lê dema sûreyekî hukmê wî eşkere dike nazil dibe, tu dibînî ku ew ên dilmerez (ji tirsa mirinê) bi awireke bêhişketî/velisî li te dinêrin. Tiştê ku jê ditirsin bê serê wan!

**21.** (Lê) îtaet û axaftina peyva xweş (hewce bû). Dema ku giringî li ser îş (emrê cîhadê) pêk bû, (eger) wan ji Allah re sedeqet nîşan bidana ev, wê ji bo wan bixêrtir bûna.

**22.** Hêvîya ji we tê kirin ma ne ew e ku piştî hûn (ji îslâmê) rû vegerînin, li ser rûyê erdê kirina fesadîyê û veqetandina pêwendîyên eqrebatîyê ye?

**23.** Evana ew in ku; Allah, lanet li wan kiriye û guhê wan ker û çavên wan jî kor kiriye.

**24.** Erê ma ew li ser Quranê bi kurahî nafikirin? Ma qey li ser qelbên wan kilît hene?

**25.** Ew ên piştî ku hîdayet ji wan re vikîvekirî diyar bûye û berepaş vegerîyane/bûne murted, bêguman şeytan (vê rewşê) ji wan re xemilandîye û bi hêvîyên dûr/dirêj (ew xapandine).

**26.** (Sedema vê ev e,) ew ji wan ên ku ji ya Allah nazil kiriye nerazî ne re digotin: “Em ê di hin karan de îtaetî we bikin.” Allah, bi sirrên wan/ya ku vedişêrin dizane.

(Di hin karan de doza îtaeta ji wan kesên ji daxistîyên Allah hez nakin re, li îndallah/li cem Allah rîddet e. Gelo rewşa wan kesên ku bi sozdayinê jî têr nakin û bi dirêjahîya umrekê îtaeta/xizmeta wan dikin çawa ye?)

**27.** Dema melaîket bi lêxistina rûyên wan û piştên wan canê wan bistîne, wê rewşa wan çawa bibe?

**28.** Ev, ji ber vê ye ku, wan da pey tiştê ku Allah lê hatîye xezebê û razî bûna wî xweş nedîtin e. (Allah jî) amelên wan pûç/betal derxist.

**29.** Nexwe ew ên dilmerez, qey zen dikin ku wê Allah kîna/neyartîya wan dernexe holê?

وَلَوْ نَشَٓاءُ لَاَرَيْنَاكَهُمْ فَلَعَرَفْتَهُمْ بِسِيمٰيهُمْ وَلَتَعْرِفَنَّهُمْ
فِي لَحْنِ الْقَوْلِ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ اَعْمَالَكُمْ ﴿٣٠﴾ وَلَنَبْلُوَنَّكُمْ حَتّٰى
نَعْلَمَ الْمُجَاهِدِينَ مِنْكُمْ وَالصَّابِرِينَ وَنَبْلُوَا اَخْبَارَكُمْ ﴿٣١﴾
اِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا وَصَدُّوا عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ وَشَٓاقُّوا الرَّسُولَ مِنْ بَعْدِ
مَا تَبَيَّنَ لَهُمُ الْهُدٰى لَنْ يَضُرُّوا اللّٰهَ شَيْـًٔا وَسَيُحْبِطُ اَعْمَالَهُمْ ﴿٣٢﴾
يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُٓوا اَطِيعُوا اللّٰهَ وَاَطِيعُوا الرَّسُولَ وَلَا تُبْطِلُٓوا
اَعْمَالَكُمْ ﴿٣٣﴾ اِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا وَصَدُّوا عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ ثُمَّ مَاتُوا
وَهُمْ كُفَّارٌ فَلَنْ يَغْفِرَ اللّٰهُ لَهُمْ ﴿٣٤﴾ فَلَا تَهِنُوا وَتَدْعُٓوا اِلَى السَّلْمِ
وَاَنْتُمُ الْاَعْلَوْنَ وَاللّٰهُ مَعَكُمْ وَلَنْ يَتِرَكُمْ اَعْمَالَكُمْ ﴿٣٥﴾
اِنَّمَا الْحَيٰوةُ الدُّنْيَا لَعِبٌ وَلَهْوٌ وَاِنْ تُؤْمِنُوا وَتَتَّقُوا يُؤْتِكُمْ
اُجُورَكُمْ وَلَا يَسْـَٔلْكُمْ اَمْوَالَكُمْ ﴿٣٦﴾ اِنْ يَسْـَٔلْكُمُوهَا
فَيُحْفِكُمْ تَبْخَلُوا وَيُخْرِجْ اَضْغَانَكُمْ ﴿٣٧﴾ هَٓا اَنْتُمْ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ
تُدْعَوْنَ لِتُنْفِقُوا فِي سَبِيلِ اللّٰهِ فَمِنْكُمْ مَنْ يَبْخَلُ
وَمَنْ يَبْخَلْ فَاِنَّمَا يَبْخَلُ عَنْ نَفْسِهِ وَاللّٰهُ الْغَنِيُّ وَاَنْتُمُ الْفُقَرَٓاءُ
وَاِنْ تَتَوَلَّوْا يَسْتَبْدِلْ قَوْمًا غَيْرَكُمْ ثُمَّ لَا يَكُونُوا اَمْثَالَكُمْ ﴿٣٨﴾

**30.** Eger me daxwaz bikira helbet me yê wan nîşanî te bidana û wê te jî wan ji rûyên wan ew nas bikirana. Muheqeq tu wan ji şêwaza axaftina wan (ji şelipîna zimanê wan) nas dikî. Allah, bi amelên we dizane.

**31.** Qesem be, heta ku ji nav we yên mucahîd û sebirvan derxînin holê em ê we îmtîhan bikin. Û agahîyên we jî bên ceribandin (em ê agahîyên der heqê wan ên cîhad dikin û sebirvan in û ew ên ku sebir nekirine û revîyane eşkere bikin).

**32.** Bêguman ew ên bûne kafir û ji rêya Allah men dikin û piştî ku hîdayet ji wan re vikîvekirî diyar bûye û dijraberîya pêxember kirine/di nav sefa dij de cih girtine, qet nikarin zerar bidin Allah. (Allah) amelên wan pûç/betal dike.

**33.** Gelî ew ên îman anîne! Îtaetî Allah bikin. Îtaetî Rasûlê wî bikin û amelên xwe pûç/betal dernexin.

**34.** Bêguman ew ên bûne kafir û ji rêya Allah men dikin û paşê jî li ser kufrê mirine; Allah, wan mexfîret nake.

**35.** Digel ku hûn serkeftî ne sist nebin û daxwaza aştîyê/sulhê nekin. Allah, bi we re ye û amelên we kêm û zayî nake.

**36.** Jiyana dinyayê ji lîstik û şahîyê pêkhatî ye. Eger hûn îman bînin û bitirsin û xwe biparêzin (Allah,) ecirên we dide û malê we jî naxwaze.

**37.** Eger (hemû malê we) ji we bixwaze û we têxe zorê, hûn ê jî qesîsîyê bikin. Ev jî wê kîna/neyartîya we derxîne holê.

**38.** Ha, rewşa we ev e: Hûn hatine gazîkirin ku malên xwe fîsebîlîllah înfaq bikin, lê ji nav we hinek qesîsîyê dikin. Her kî qesîsîyê bike, ew bitenê di aleyha xwe de qesîsî dike. Allah, (ew ê her tişt muhtacê wî ye lê ew ne hewcedarê tu kesî) Xenîy e. Yên hewcedar hûn in. Eger hûn rû vegerînin wê (di şûna we de) qewmekî din bîne û (paşê) ew nabin wekî we jî. (Îtaetî Allah dikin.)

سُورَةُ الْفَتْحِ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ تِسْعٌ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
اِنَّا فَتَحْنَا لَكَ فَتْحًا مُبِينًاۙ ﴿١﴾ لِيَغْفِرَ لَكَ اللّٰهُ مَا تَقَدَّمَ مِنْ ذَنْبِكَ
وَمَا تَاَخَّرَ وَيُتِمَّ نِعْمَتَهُ عَلَيْكَ وَيَهْدِيَكَ صِرَاطًا مُسْتَقِيمًاۙ ﴿٢﴾ وَيَنْصُرَكَ
اللّٰهُ نَصْرًا عَزِيزًا ﴿٣﴾ هُوَ الَّذِٓي اَنْزَلَ السَّكِينَةَ فِي قُلُوبِ الْمُؤْمِنِينَ
لِيَزْدَادُٓوا اِيمَانًا مَعَ اِيمَانِهِمْۜ وَلِلّٰهِ جُنُودُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَكَانَ
اللّٰهُ عَلِيمًا حَكِيمًاۙ ﴿٤﴾ لِيُدْخِلَ الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ جَنَّاتٍ
تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا وَيُكَفِّرَ عَنْهُمْ سَيِّـَٔاتِهِمْۜ
وَكَانَ ذٰلِكَ عِنْدَ اللّٰهِ فَوْزًا عَظِيمًاۙ ﴿٥﴾ وَيُعَذِّبَ الْمُنَافِقِينَ وَالْمُنَافِقَاتِ
وَالْمُشْرِكِينَ وَالْمُشْرِكَاتِ الظَّٓانِّينَ بِاللّٰهِ ظَنَّ السَّوْءِۜ عَلَيْهِمْ
دَٓائِرَةُ السَّوْءِۚ وَغَضِبَ اللّٰهُ عَلَيْهِمْ وَلَعَنَهُمْ وَاَعَدَّ لَهُمْ جَهَنَّمَۜ وَسَٓاءَتْ
مَصِيرًا ﴿٦﴾ وَلِلّٰهِ جُنُودُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَكَانَ اللّٰهُ عَزِيزًا
حَكِيمًا ﴿٧﴾ اِنَّٓا اَرْسَلْنَاكَ شَاهِدًا وَمُبَشِّرًا وَنَذِيرًاۙ ﴿٨﴾ لِتُؤْمِنُوا
بِاللّٰهِ وَرَسُولِهِ وَتُعَزِّرُوهُ وَتُوَقِّرُوهُۜ وَتُسَبِّحُوهُ بُكْرَةً وَاَصِيلًا ﴿٩﴾



## 48. SÛREYA FETIH

*(Sûreya Fetih, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û bîst û neh (29) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya çil û heştemîn e. Di çend ayetan de peyva "Feth" dibore. Ji ber vê yekê sûre jî wek sûreya Fetih binav bûye. Sûreya Fetih, di şeşemîn sala hîcretê dema ku Rasûlullah (ass) ji Hudeybiye vedigerîya nazil bûye. Muşrîkên Mekkeyê ew sal ji bo hecca muslîman bûn asteng. Paşê bi şertê ku wê salê vegerin û saleke din ji bo heccê werin li Hudeybiye peymana çekdanîn û sulhê danîn. Ji bo Rasûlullah (ass) û mûmînan nuzûla vê sûreyê bû wekî mizgîna fetha Mekkeyê. Di sûreyê de mijarên aqîda tewhîdê û emn û sekînet dayîna mûmînan û ji bo wan hebûna xelata cennetê û qewî kirina îmanê û razîbûna Allah (ac) ya li ser eshabîyên li Hudeybiye û rastandina wê xewna Rasûlullah (ass) dîtibû ku dikeve Mescîdu'l Heramê tên bi dest girtin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bêguman me fetheke mubîn/vikîvekirî daye te.

**2.** Ji bo ku Allah, gunehên te yên borîne û yên heta îro hatine mexfîret bike û nîmetên xwe yên li ser te temam bike û te rabigihîne ser rêya rasterast.

**3.** Û ji bo ku Allah, bi serkeftineke birûmet alîkarîya te bike.

**4.** Ew ê ji bo ku îman tevlê îmana xwe bikin, sekînetê daxistîye qelbên mûmînan, ew e. Artêşên/Ordîyên erd û esmanan aîdê Allah in. Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**5.** (Ev hemû) ji bo ku mêr û jinên mûmîn bixe cennetên ku di binê wan de çem diherikin û ew ê li wir bêdawî bimînin û xerabîyên wan binixumîne. Ev, li îndallah/li cem Allah qezenceke/xelasîyeke herî mezin e.

**6.** (Wekî din) ji bo ku (Allah) mêr û jinên munafiq û mêr û jinên muşrîk bide ber ezabê. (Ew in ku,) der heqê Allah de zena xerab dikin. Çerxa xerabîyê bi ser wan de bê/xerabî ji ser wan kêm nebe. Allah li wan hatîye xezebê û lanet li wan kiriye û ji bo wan cehennem amade kiriye. Ew, çi cihlêvegereke xerab e.

**7.** Artêşên/Ordîyên erd û esmanan aîdê Allah in. Allah, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**8.** Bêguman me tu wek şahid û mizgînder û hişyarker şand.

**9.** Ji bo ku îman bi Allah û bi pêxemberê wî bînin û piştgirîya wî bikin û rêzdarî/hurmet nîşanî wî bidin û hûn sibeh û êvar (Allah) tesbîh bikin.

اِنَّ الَّذٖينَ يُبَايِعُونَكَ اِنَّمَا يُبَايِعُونَ اللّٰهَۜ يَدُ اللّٰهِ فَوْقَ اَيْدٖيهِمْۚ
فَمَنْ نَكَثَ فَاِنَّمَا يَنْكُثُ عَلٰى نَفْسِهٖۚ وَمَنْ اَوْفٰى بِمَا عَاهَدَ
عَلَيْهُ اللّٰهَ فَسَيُؤْتٖيهِ اَجْرًا عَظٖيمًا ﴿١٠﴾ سَيَقُولُ لَكَ الْمُخَلَّفُونَ
مِنَ الْاَعْرَابِ شَغَلَتْنَٓا اَمْوَالُنَا وَاَهْلُونَا فَاسْتَغْفِرْ لَنَاۚ
يَقُولُونَ بِاَلْسِنَتِهِمْ مَا لَيْسَ فٖي قُلُوبِهِمْۜ قُلْ فَمَنْ يَمْلِكُ
لَكُمْ مِنَ اللّٰهِ شَيْـًٔا اِنْ اَرَادَ بِكُمْ ضَرًّا اَوْ اَرَادَ بِكُمْ نَفْعًاۜ
بَلْ كَانَ اللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبٖيرًا ﴿١١﴾ بَلْ ظَنَنْتُمْ اَنْ لَنْ يَنْقَلِبَ
الرَّسُولُ وَالْمُؤْمِنُونَ اِلٰٓى اَهْلٖيهِمْ اَبَدًا وَزُيِّنَ ذٰلِكَ
فٖي قُلُوبِكُمْ وَظَنَنْتُمْ ظَنَّ السَّوْءِۚ وَكُنْتُمْ قَوْمًا بُورًا ﴿١٢﴾
وَمَنْ لَمْ يُؤْمِنْ بِاللّٰهِ وَرَسُولِهٖ فَاِنَّٓا اَعْتَدْنَا لِلْكَافِرٖينَ سَعٖيرًا ﴿١٣﴾
وَلِلّٰهِ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ يَغْفِرُ لِمَنْ يَشَٓاءُ وَيُعَذِّبُ
مَنْ يَشَٓاءُۜ وَكَانَ اللّٰهُ غَفُورًا رَحٖيمًا ﴿١٤﴾ سَيَقُولُ الْمُخَلَّفُونَ
اِذَا انْطَلَقْتُمْ اِلٰى مَغَانِمَ لِتَأْخُذُوهَا ذَرُونَا نَتَّبِعْكُمْۚ يُرٖيدُونَ
اَنْ يُبَدِّلُوا كَلَامَ اللّٰهِۜ قُلْ لَنْ تَتَّبِعُونَا كَذٰلِكُمْ قَالَ اللّٰهُ مِنْ قَبْلُۚ
فَسَيَقُولُونَ بَلْ تَحْسُدُونَنَاۜ بَلْ كَانُوا لَا يَفْقَهُونَ اِلَّا قَلٖيلًا ﴿١٥﴾

**10.** Ew ên beyata te kirine, ya rast ji Allah re beyat kirine. Destê Allah li ser destên wan e. Kî (beyata xwe) xera bike, di aleyha xwe de xera dike. Kî jî xwedîyê wê soza xwe ya ku daye Allah be (û pêwistên wê pêk bîne, wê Allah) xelateke herî mezin bidê.

**11.** Ji wan bedewîyên ku di paş de hatine hiştin wê ji te re bibêjin: “Mal û ehlên me em mijul kirin. (Ji derketina şer re bûne asteng). Ji bo me daxwaza mexfîretê bike.” Tiştê ku di qelbên wan de tune ye bi zimanên xwe dibêjin. Bibêje: “Eger Allah ji bo we zerarek an jî feydeyek teqdîr bike, li dij Allah kî dikare we biparêze? (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, Allah ji karên we agahdar e.

**12.** (Nexêr!) Bi rastî we guman dikir ku pêxember û mûmînan, wê tu carî bi bal ehlê xwe ve nevegerin. Ev (raman), di qelbên we de hat xemilandin û we bi zena xerab zen kir û axir hûn bûne qewmekî mehkûmê tunebûnê û helak bûyî.

**13.** Her kî îman bi Allah û bi Rasûlê wî neyne (bila bizanibe ku,) bêguman me ji bo kafiran agirekî ku alavên bi erjeng direşîne amade kiriye.

**14.** Hukimdarîya/Serwerîya erd û esmanan aîdê Allah e. Kî bixwaze dibexşîne û kî jî bixwaze ezab lê dike. Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**15.** Dema hûn ji bo girtina xenîmetan diçin, ew ên (ji şer) di paş de mane wê bibêjin: “Bihêlin em jî di pey we de werin.” Dixwazin ku soza Allah biguherînin. Bibêje: “Hûn ê di pey me de newin/neyên. Lewre Allah, berê de jî wiha gotibû: “(Ew) wê bibêjin: “Ya rastî hûn hesûdî û çavnebarîya me dikin.” (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, ew pir hindik fêm dikin.

قُلْ لِلْمُخَلَّفٖينَ مِنَ الْاَعْرَابِ سَتُدْعَوْنَ اِلٰى قَوْمٍ اُو۬لٖى بَأْسٍ
شَدٖيدٍ تُقَاتِلُونَهُمْ اَوْ يُسْلِمُونَۚ فَاِنْ تُطٖيعُوا يُؤْتِكُمُ اللّٰهُ اَجْرًا
حَسَنًاۚ وَاِنْ تَتَوَلَّوْا كَمَا تَوَلَّيْتُمْ مِنْ قَبْلُ يُعَذِّبْكُمْ عَذَابًا
اَلٖيمًا ﴿١٦﴾ لَيْسَ عَلَى الْاَعْمٰى حَرَجٌ وَلَا عَلَى الْاَعْرَجِ حَرَجٌ
وَلَا عَلَى الْمَرٖيضِ حَرَجٌۜ وَمَنْ يُطِعِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ يُدْخِلْهُ جَنَّاتٍ
تَجْرٖى مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُۚ وَمَنْ يَتَوَلَّ يُعَذِّبْهُ عَذَابًا اَلٖيمًا ﴿١٧﴾
لَقَدْ رَضِىَ اللّٰهُ عَنِ الْمُؤْمِنٖينَ اِذْ يُبَايِعُونَكَ تَحْتَ الشَّجَرَةِ فَعَلِمَ
مَا فٖى قُلُوبِهِمْ فَاَنْزَلَ السَّكٖينَةَ عَلَيْهِمْ وَاَثَابَهُمْ فَتْحًا قَرٖيبًاۙ ﴿١٨﴾
وَمَغَانِمَ كَثٖيرَةً يَأْخُذُونَهَاۜ وَكَانَ اللّٰهُ عَزٖيزًا حَكٖيمًا ﴿١٩﴾ وَعَدَكُمُ
اللّٰهُ مَغَانِمَ كَثٖيرَةً تَأْخُذُونَهَا فَعَجَّلَ لَكُمْ هٰذِهٖ وَكَفَّ
اَيْدِىَ النَّاسِ عَنْكُمْۚ وَلِتَكُونَ اٰيَةً لِلْمُؤْمِنٖينَ وَيَهْدِيَكُمْ
صِرَاطًا مُسْتَقٖيمًاۙ ﴿٢٠﴾ وَاُخْرٰى لَمْ تَقْدِرُوا عَلَيْهَا قَدْ اَحَاطَ اللّٰهُ
بِهَاۜ وَكَانَ اللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَیْءٍ قَدٖيرًا ﴿٢١﴾ وَلَوْ قَاتَلَكُمُ الَّذٖينَ
كَفَرُوا لَوَلَّوُا الْاَدْبَارَ ثُمَّ لَا يَجِدُونَ وَلِيًّا وَلَا نَصٖيرًا ﴿٢٢﴾ سُنَّةَ
اللّٰهِ الَّتٖى قَدْ خَلَتْ مِنْ قَبْلُۚ وَلَنْ تَجِدَ لِسُنَّةِ اللّٰهِ تَبْدٖيلًا ﴿٢٣﴾




**16.** Ji bedewîyên ku di paş de hatine hiştin re bibêje: “Hûn ê di nêz de bi bal qewmekî şervan ve (ji bo şer) bêne gazîkirin. Hûn ê an bi wan re şer bikin an jî wê (ew) teslîm (îslâm) bibin. Eger hûn îtaet bikin wê Allah, xelateke xweşik bide we. Na, eger wekî ku we berê de jî vegerandibû hûn dîsa pişta xwe vegerînin, wê (bi ezabekî) biêş û jan we bide ber ezabê.”

**17.** Ji yê kor re guneh tune û ji yê qop/seqet re guneh tune û ji yê nexweş re jî guneh tune (ku ji şer paş ve dimînin/beşdarî şer nabin). Kî îtaetî Allah û Rasûlê wî bike, dê wî bixe cennetên di binî de çêm diherikin. Kî jî (ji îtaetê) rû vegerîne wê (bi ezabekî) biêş û jan wî bide ber ezabê.

**18.** Sond be, dema ku di binê wê darê de beyat dane te, Allah ji mûmînan qayîl/razî bûye. Bi (dilsozîya) di qelbên wan de zanîbû û bi ser wan de sekînet daxist û wan bi fetheke nêz xelat kiriye.

**19.** Û pir xenîmetên ku bi dest bixin jî (wek xelat da wan). Allah, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**20.** Allah, weada gelek xenîmetên ku hûn ê bi dest xwe bixin daye we. (Ev a we niha bi dest xistîye, nîmeteke) ku bi lez daye we. Destên însanan (ya ji bo zerar dayînê) ji we kişandîye. (Ev hemû,) ji bo ku ji mûmînan re bibe delîlek (ku Allah weada xwe anîye cih) û ji bo we rabigihîne ser rêya rasterast e.

**21.** Hin (nîmet) ên din ku we hêj bi dest nexistine jî (wead kiriye). Muheqeq Allah, (bi ilmê xwe tiştên ku wead kiriye) dor li wan girtîye. Allah, ew ê li ser her tiştî qadir e.

**22.** Eger ew kafir bi we re şer bikin wê bi paş xwe ve (birevin). Paşê jî (ji bo xwe) ne dostekî û ne jî alîkarekî dibînin.

**23.** (Ev,) sunnetullah e/qanûna neguhêrbar e ku (der heqê kafiran de) berdewam e. Tu, di sunnetullah/di qanûnên Allah de guherandinekî nabînî.

وَهُوَ الَّذٖى كَفَّ اَيْدِيَهُمْ عَنْكُمْ وَاَيْدِيَكُمْ عَنْهُمْ بِبَطْنِ
مَكَّةَ مِنْ بَعْدِ اَنْ اَظْفَرَكُمْ عَلَيْهِمْ وَكَانَ اللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ
بَصٖيرًا ﴿٢٤﴾ هُمُ الَّذٖينَ كَفَرُوا وَصَدُّوكُمْ عَنِ الْمَسْجِدِ
الْحَرَامِ وَالْهَدْىَ مَعْكُوفًا اَنْ يَبْلُغَ مَحِلَّهُ وَلَوْلَا رِجَالٌ
مُؤْمِنُونَ وَنِسَٓاءٌ مُؤْمِنَاتٌ لَمْ تَعْلَمُوهُمْ اَنْ تَطَؤُهُمْ فَتُصٖيبَكُمْ
مِنْهُمْ مَعَرَّةٌ بِغَيْرِ عِلْمٍ لِيُدْخِلَ اللّٰهُ فٖى رَحْمَتِهٖ مَنْ يَشَٓاءُ لَوْ تَزَيَّلُوا
لَعَذَّبْنَا الَّذٖينَ كَفَرُوا مِنْهُمْ عَذَابًا اَلٖيمًا ﴿٢٥﴾ اِذْ جَعَلَ الَّذٖينَ
كَفَرُوا فٖى قُلُوبِهِمُ الْحَمِيَّةَ حَمِيَّةَ الْجَاهِلِيَّةِ فَاَنْزَلَ اللّٰهُ
سَكٖينَتَهُ عَلٰى رَسُولِهٖ وَعَلَى الْمُؤْمِنٖينَ وَاَلْزَمَهُمْ كَلِمَةَ
التَّقْوٰى وَكَانُٓوا اَحَقَّ بِهَا وَاَهْلَهَا وَكَانَ اللّٰهُ بِكُلِّ
شَىْءٍ عَلٖيمًا ﴿٢٦﴾ لَقَدْ صَدَقَ اللّٰهُ رَسُولَهُ الرُّءْيَا بِالْحَقِّ لَتَدْخُلُنَّ
الْمَسْجِدَ الْحَرَامَ اِنْ شَٓاءَ اللّٰهُ اٰمِنٖينَ مُحَلِّقٖينَ رُؤُسَكُمْ
وَمُقَصِّرٖينَ لَا تَخَافُونَ فَعَلِمَ مَا لَمْ تَعْلَمُوا فَجَعَلَ مِنْ دُونِ
ذٰلِكَ فَتْحًا قَرٖيبًا ﴿٢٧﴾ هُوَ الَّذٖٓى اَرْسَلَ رَسُولَهُ بِالْهُدٰى وَدٖينِ
الْحَقِّ لِيُظْهِرَهُ عَلَى الدّٖينِ كُلِّهٖ وَكَفٰى بِاللّٰهِ شَهٖيدًا ﴿٢٨﴾

**24.** Yê ku piştî hûn li dij wan bi ser xistin, li navenda Mekkeyê destên wan ji we û destên we jî ji wan kişand (ji şera we re bû asteng) ew e. Allah, karên we dibîne.

**25.** Ew in ku; bûne kafir û we ji Mescîdu'l Haram men kirine û qurbanan digirin û nahêlin ew bigihîjin cihê xwe. Eger ne ji ber binpêkirin (zerar dayîn) a mûmînên li wê derê ku hûn wan nas nakin û ji ber lome kirina wan (propogandaya 'hemdînên xwe dikujin') nebûna (wê Allah hûn bixista Mekkeyê û di şûna sulha Hudeybîye de wê fetih îhsanî we bikira). Heta ku Allah, kî daxwaz bike daxilê rahmeta xwe (dînê xwe) bike. Eger (mûmînên di nava wan de) ji hev veqetîyana, me yê (bi ezabekî) biêş û jan ew ên kafir bidana ber ezabê.

**26.** Wê demê ew ên kafir esabîyeta/rika dewra cahilîyê di qelbên xwe de pêxistin, Allah ji pêxemberê xwe û ji mûmînan re hizûr/sekînet daxist û wan li ser kelîmeya teqwayê (li ser kelîmeya Laîlâheîllallahê) ve girêdayî hişt. (Jixwe) ew jî ji vê re layiq û ehîl bûn. Allah zanayê her tiştî ye.

**27.** Qesem be, Allah xewna ku nîşanî pêxemberê xwe dabû rast deranî. Biîznillah muheqeq hin ji we por tiraşkirî an jî hin ji we por qusandî û di nava ewlehîyê de hûn ê bikevin Mescîdu'l Haramê. Tiştê ku we pê nizanîbû (Allah) dizane û berîya vê fetheke nêz (peymana Hudeybîye) teqdîr kir.

**28.** Ji bo ku li ser hemû dînan serdest bigire, yê ku pêxemberê xwe bi hîdayet û bi dînê heq şandîye ew e. Wek şahid Allah bes e.

مُحَمَّدٌ رَسُولُ اللّٰهِۜ وَالَّذ۪ينَ مَعَهُٓ اَشِدَّٓاءُ عَلَى الْكُفَّارِ رُحَمَٓاءُ
بَيْنَهُمْ تَرٰيهُمْ رُكَّعًا سُجَّدًا يَبْتَغُونَ فَضْلًا مِنَ اللّٰهِ وَرِضْوَانًاۘ
س۪يمَاهُمْ ف۪ي وُجُوهِهِمْ مِنْ اَثَرِ السُّجُودِۜ ذٰلِكَ مَثَلُهُمْ فِي التَّوْرٰيةِۚ
وَمَثَلُهُمْ فِي الْاِنْج۪يلِۚ كَزَرْعٍ اَخْرَجَ شَطْـَٔهُ فَاٰزَرَهُ فَاسْتَغْلَظَ
فَاسْتَوٰى عَلٰى سُوقِه۪ يُعْجِبُ الزُّرَّاعَ لِيَغ۪يظَ بِهِمُ الْكُفَّارَۜ وَعَدَ
اللّٰهُ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ مِنْهُمْ مَغْفِرَةً وَاَجْرًا عَظ۪يمًا ﴿٢٩﴾

سُورَةُ الْحُجُرَاتِ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانِي عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تُقَدِّمُوا بَيْنَ يَدَيِ اللّٰهِ وَرَسُولِه۪ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ اِنَّ اللّٰهَ
سَم۪يعٌ عَل۪يمٌ ﴿١﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَرْفَعُٓوا اَصْوَاتَكُمْ فَوْقَ صَوْتِ
النَّبِيِّ وَلَا تَجْهَرُوا لَهُ بِالْقَوْلِ كَجَهْرِ بَعْضِكُمْ لِبَعْضٍ اَنْ تَحْبَطَ
اَعْمَالُكُمْ وَاَنْتُمْ لَا تَشْعُرُونَ ﴿٢﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يَغُضُّونَ اَصْوَاتَهُمْ عِنْدَ
رَسُولِ اللّٰهِ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ امْتَحَنَ اللّٰهُ قُلُوبَهُمْ لِلتَّقْوٰىۜ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَاَجْرٌ
عَظ۪يمٌ ﴿٣﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يُنَادُونَكَ مِنْ وَرَٓاءِ الْحُجُرَاتِ اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْقِلُونَ ﴿٤﴾

**29.** Muhammed, Rasûlê Allah e. Ew ên pê re ne li dij kafiran dijwar in û di navbera xwe de dilbirehim in. Tu wan; di nav rukûvanan û secdebiran de û di daxwazîya bi dest xistina ji lutf û razîbûna Allah de dibînî. Elameta wan ev e ku, di rûyên wan de dewsa secdê heye. Ev wesfê wan a di Tewratê de ye. Wesfên wan ên di Încîlê de jî wiha ne ku; ew, weke çandek in ku zîl daye û xurt û sitûr bûye û xwe li ser koka xwe girtîye ku ev jî li xweşa cotkaran diçe. (Mîsala xurt bûn û belav bûna wan a wekî çandekî) ji bo ku kafir pê hêrs bibin hatîye dayîn. Allah, ji nav wan ew ên ku îman anîne û amelên salih kirine re mexfîret û xelateke herî mezin wead kiriye.



## 49. SÛREYA HÛCÛRÂT

*(Sûreya Hûcûrât, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û hijdeh (18) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya çil û nehemîn e. Sûre, navê xwe ji peyva "Hûcûrât" sitendîye ku ew jî tê ser maneya pirjimara "hicre/xûrfe". Sûreya Hûcûrât, di dirêjahîya naveroka xwe de qaîdeyên exlaqê hînî mûmînan dike. Wek yekemîn jî edeba li dij Allah (ac) û Rasûlê wî (ass) û nexistina dengê xwe bi ser dengê wan ve an jî li ser gotinên wan sukûteke bi edeb tê hîn kirin. Tinazkarîya mûmînan ya di navbera xwe de û navnûçikdayin/leqebdayîn û şermezarkina hevdu hatîye qedexe kirin. Sûre bi me dide zanîn ku pîvana rûmetê ya di navbera însanan de enceq teqwa ye û di navbera muslîmbûn û mûmîntîyê de ferq heye.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Gelî ew ên îman anîne! Nekevin pêşîya Allah û Rasûlê wî. Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin! Bêguman Allah (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (zanayê her tiştî) Alîm e.

**2.** Gelî ew ên îman anîne! Dengê xwe bi ser dengê pêxember nexin. Wekî ku hûn bi dengê bilind li hev diqîrin, wisa bi wî neqîrin. Nexwe, bêyî ku haya we jê çêbe wê amelên we pûç/betal bibe.

(Sûreya Hûcûrât, sûreyekê wisan e ku edeb hînî mûmînan dike. Edeba pêşîn ku hatîye fêrkirin: Neketina pêşîya Allah (ac) û Rasûlê wî (ass) û nexistina dengê xwe bi ser dengê wan ve an jî li ser gotinên wan sukûteke bi edeb e. Digel ku der heqê mijarekî de Allah (ac) û Rasûlê wî (ass) hukim dane û nassên vikîvekirî jî hene, bi navê fitû/îctîhad hukim dayîn tê ser vê maneyê ku li dij wan dengê xwe bi ser dengê Allah (ac) û Rasûlê wî (ass) dixin. Ev jî pirsgirêkeke aqîdewî ye û amelan pûç û betal dike. (Bnr. 4/Nîsa, 65; 33/Ehzâb, 36))

**3.** Qet tu guman tune, ew ên ku li cem Rasûlullah dengê xwe kêm dikin; ew in ku Allah (dilsozîya qelbên wan dît û wan kir ji muxlîsan û) qelbên wan ji bo teqwayê îmtîhan kiriye. Ji wan re mexfîret û xelateke mezin heye.

**4.** Bi rastî ew ên di pişt xurfeyan/odeyan de gazî te dikin, pirên wan fehm nakin.

وَلَوْ اَنَّهُمْ صَبَرُوا حَتّٰى تَخْرُجَ اِلَيْهِمْ لَكَانَ خَيْرًا لَهُمْ وَاللّٰهُ
غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿٥﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوٓا اِنْ جَٓاءَكُمْ فَاسِقٌ بِنَبَأٍ
فَتَبَيَّنُوٓا اَنْ تُص۪يبُوا قَوْمًا بِجَهَالَةٍ فَتُصْبِحُوا عَلٰى مَا فَعَلْتُمْ
نَادِم۪ينَ ﴿٦﴾ وَاعْلَمُوٓا اَنَّ ف۪يكُمْ رَسُولَ اللّٰهِ لَوْ يُط۪يعُكُمْ ف۪ي كَث۪يرٍ
مِنَ الْاَمْرِ لَعَنِتُّمْ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ حَبَّبَ اِلَيْكُمُ الْا۪يمَانَ وَزَيَّنَهُ ف۪ي قُلُوبِكُمْ
وَكَرَّهَ اِلَيْكُمُ الْكُفْرَ وَالْفُسُوقَ وَالْعِصْيَانَ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الرَّاشِدُونَ ﴿٧﴾
فَضْلًا مِنَ اللّٰهِ وَنِعْمَةً وَاللّٰهُ عَل۪يمٌ حَك۪يمٌ ﴿٨﴾ وَاِنْ طَٓائِفَتَانِ
مِنَ الْمُؤْمِن۪ينَ اقْتَتَلُوا فَاَصْلِحُوا بَيْنَهُمَا فَاِنْ بَغَتْ اِحْدٰيهُمَا
عَلَى الْاُخْرٰى فَقَاتِلُوا الَّت۪ي تَبْغ۪ي حَتّٰى تَف۪ٓيءَ اِلٰٓى اَمْرِ اللّٰهِ فَاِنْ فَٓاءَتْ
فَاَصْلِحُوا بَيْنَهُمَا بِالْعَدْلِ وَاَقْسِطُوا اِنَّ اللّٰهَ يُحِبُّ الْمُقْسِط۪ينَ ﴿٩﴾
اِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ اِخْوَةٌ فَاَصْلِحُوا بَيْنَ اَخَوَيْكُمْ وَاتَّقُوا اللّٰهَ لَعَلَّكُمْ
تُرْحَمُونَ ﴿١٠﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا يَسْخَرْ قَوْمٌ مِنْ قَوْمٍ عَسٰٓى
اَنْ يَكُونُوا خَيْرًا مِنْهُمْ وَلَا نِسَٓاءٌ مِنْ نِسَٓاءٍ عَسٰٓى اَنْ يَكُنَّ خَيْرًا
مِنْهُنَّ وَلَا تَلْمِزُوٓا اَنْفُسَكُمْ وَلَا تَنَابَزُوا بِالْاَلْقَابِ بِئْسَ الْاِسْمُ
الْفُسُوقُ بَعْدَ الْا۪يمَانِ وَمَنْ لَمْ يَتُبْ فَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الظَّالِمُونَ ﴿١١﴾

**5.** Eger heta tu derketayî cem wan sebir bikirana wê ji wan re bixêrtir bûya. Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên we pir bi merhamet) Rahîm e.

**6.** Gelî ew ên îman anîne! Eger yekî fasiq dema ku ji we re xeberek anî, (baş tehqîq bikin û rastîya) wê zelal bikin. Da ku hûn zerar nedin civakekî û piştre jî hûn li kirina xwe poşman nebin.

**7.** Û bizanibin ku di navbera we de Rasûlullah heye. Eger ew, di gelek karan de îtaetî we bikira, (pêwistîya her agahîya ku hûn didin wî pêk bianîya) hûn ê biketina tengasîyê. Lê belê Allah îman bi we daye hezkirin û ew di qelbên we de xemilandîye. Kufr û fisq û îsyan jî ji we re kirêt/nebaş nîşan daye. Ew ên ku rêya rûşdê/kemilînê dîtine jî ha ev in.

**8.** Lutf û nîmeteke ji Allah... (Jixwe) Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**9.** Eger ji mûmînan du kom şerê hev bikin, navbera wan bisilhînin. Eger ji wan yek li dij ya din zêdegavîyê bike heta ku vegere ser emrê Allah hûn bi ya êrîşkar re şer bikin. Eger vegere hûn navbera wan bi edalet sererast bikin û dadwer/adil bin. Allah, ji wan kesên ku bi edalet tevdigerin hez dike.

**10.** Bi rastî mumîn ji hev re bira ne. Navbera birayên xwe bisilhînin û ji Allah bitirsin û xwe biparêzin. Hêvî dibe ku merhamet li we bê kirin.

**11.** Gelî ew ên îman anîne! Bila qewmek tinazê xwe/henekê xwe bi qewmekî din neke. Dibe ku ew (ên tinazê xwe bi wan dikin) ji wan çêtir bin. Bila jin jî bi jinan re tinazê xwe/henekê xwe nekin. Dibe ku ew (ên tinazê xwe bi wan dikin) ji wan çêtir bin. Hûn nefsên hevdu şermezar nekin û navnûçikan/leqeban li hevdu nekin. Piştî îmanê fasiqî çi navekî xerab e. Kî jî tobe neke, evana zalim bixwe ne.

يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا اجْتَنِبُوا كَثٖيرًا مِنَ الظَّنِّۘ اِنَّ بَعْضَ
الظَّنِّ اِثْمٌ وَلَا تَجَسَّسُوا وَلَا يَغْتَبْ بَعْضُكُمْ بَعْضًاۜ اَيُحِبُّ
اَحَدُكُمْ اَنْ يَأْكُلَ لَحْمَ اَخٖيهِ مَيْتًا فَكَرِهْتُمُوهُۜ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ
اِنَّ اللّٰهَ تَوَّابٌ رَحٖيمٌ ﴿١٢﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنَّا خَلَقْنَاكُمْ مِنْ ذَكَرٍ
وَاُنْثٰى وَجَعَلْنَاكُمْ شُعُوبًا وَقَبَٓائِلَ لِتَعَارَفُواۜ اِنَّ اَكْرَمَكُمْ عِنْدَ
اللّٰهِ اَتْقٰيكُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ عَلٖيمٌ خَبٖيرٌ ﴿١٣﴾ قَالَتِ الْاَعْرَابُ اٰمَنَّاۜ
قُلْ لَمْ تُؤْمِنُوا وَلٰكِنْ قُولُٓوا اَسْلَمْنَا وَلَمَّا يَدْخُلِ الْاٖيمَانُ
فٖي قُلُوبِكُمْۜ وَاِنْ تُطٖيعُوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُ لَا يَلِتْكُمْ مِنْ اَعْمَالِكُمْ
شَيْـًٔاۜ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿١٤﴾ اِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ الَّذٖينَ اٰمَنُوا بِاللّٰهِ
وَرَسُولِهٖ ثُمَّ لَمْ يَرْتَابُوا وَجَاهَدُوا بِاَمْوَالِهِمْ وَاَنْفُسِهِمْ فٖي سَبٖيلِ
اللّٰهِۜ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الصَّادِقُونَ ﴿١٥﴾ قُلْ اَتُعَلِّمُونَ اللّٰهَ بِدٖينِكُمْۜ وَاللّٰهُ
يَعْلَمُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِۜ وَاللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلٖيمٌ ﴿١٦﴾
يَمُنُّونَ عَلَيْكَ اَنْ اَسْلَمُواۜ قُلْ لَا تَمُنُّوا عَلَيَّ اِسْلَامَكُمْۚ بَلِ اللّٰهُ
يَمُنُّ عَلَيْكُمْ اَنْ هَدٰيكُمْ لِلْاٖيمَانِ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقٖينَ ﴿١٧﴾
اِنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ غَيْبَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَاللّٰهُ بَصٖيرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿١٨﴾

**12.** Gelî ew ên îman anîne! Xwe ji pirên zenê biparêzin. Lewre qismekî zenê heye ku guneh e. Tecessûsê nekin/lêgerîna taybetîya hevdu nekin. Xiybeta hevdu nekin/li pey hevdu neaxivin. Ma yek ji we qet dixwaze ku goştê birayê xwe yê mirî bixwe? (Çawa) hîleta we jê çû/hûn (çawa) kerixîn! Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin. Bêguman Allah, (yê ku evdên xwe mûweffeqê tobeyê dike û tobeyan pirzêde qebûl dike) Tewwab û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.
**13.** Gelî însanan! Bêguman me hûn ji mêrek û jinek xuliqand. Ji bo ku hûn hevdu nas bikin me hûn kirin qewm û qebîleyan. Bi rastî li îndallah/li cem Allah ji we ya herî bi rûmet ew ê pir xwedî teqwa ye. Bêguman Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (agahdarê her tiştî) Xabîr e.
**14.** Bedewîyan gotin: "Me îman anîye." Bibêje: "We îman neanîye. Lê bibêjin 'em teslîm bûn.' " (Lewre) îman hêj neketîye qelbên we. Eger hûn îtaetî Allah û Rasûlê wî bikin (Allah) ji amelên we qet tu tiştî kêm nake. Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên we pir bi merhamet) Rahîm e.
**15.** Mûmîn enceq ew kes in ku; îman bi Allah û bi Rasûlê wî anîne û paşê jî qet neketine gumanê û bi mal û canê xwe fîsebîlîllah cîhad kirine. Evana, yên sadiq bixwe ne.
**16.** Bibêje: "Ma hûn dînê xwe hînî Allah dikin? Hal ev e ku Allah, çi tiştê li erd û esmanan heye pê dizane. Bêguman Allah bi her tiştî dizane."
(Komek ji bedewîyan îdîa kirin ku wan îman anîye. Allah (ac) agahî dide ku, ew li gor zahir wek teslîmbûyî xuya bibin jî îman neketîye qelbên wan û ew ne mûmîn in. Digel vê hişyaryê dema ku li ser mûmîntîya xwe israr kirin, Allah (ac) wiha got: "Ma hûn dînê xwe hînî Allah dikin?" û xiste holê ku ev a kirine tiştekî pir kirêt e. Hukmê mirovekî ku di heqîqetê de bi çi awayî û bi çi sifetê dibe mûmîn û ji ehlê tewhîdê enceq Allah (ac) dide. (Bnr. 2/Baqara, 138; 2/Baqara, 256; 3/Âl-î Îmran, 64; 16/Nahl, 36) Digel ku ne li gorî vê pîvanê ne jî mîsala kesên ku xwe bi navê muslîm û mûmîn dinavînin wekî mîsala wan bedewîyên xwe tê didin ku dîn hînî Allah (ac) dikin e.)
**17.** Ew ji ber ku bûne îslam (dikin qar û didin ser çav û) minnetê li te dikin. Bibêje: "Ji ber îslama xwe minnetê li min nekin. Berevajî, ji bo ku we hîdayet kiriye Allah li we minnetê dike. Eger hûn ji rastbêjan in (divê ku hûn vê heqîqetê qebûl bikin)."
**18.** Qet tu guman tune ku Allah, xeyba erd û esmanan dizane. Allah, karên we dibîne.




## 50. SÛREYA QÂF

*(Sûreya Qâf, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çil û pênc (45) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya pêncîyem e. Sûre, navê xwe ji ayeta yekemîn sitendîye ku ew jî bi herfa “Qâf”dest pê dike. Sûreya Qâf bi gelemperî van mijaran vedihewîne: Destpêka xuliqandinê û vejîna piştî mirinê û dayîna defterên amelê û derketina hizûra Allah (ac) û haşr û hesab û cennet û cehennem û sewab û îqab û terxîb/teşwîq û terhîb/tirsandin. Ji ber vê yeke Rasûlullah (ass) vê sûreyê wekî nimêja înê û nimêja îdê di wan demên civîna xelkê de dixwend.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Qâf. Sond bi Qur'an’a Mecîd/bi rûmet.

**2.** Ji ber ku hişyarkerek ji nav wan hatîye ew ên kafir şaş man û wiha gotin: “Ev tiştekî ecebmayî ye.”

**3.** “Ma qey gava ku em bimirin û bibin ax/xwelî (em ê ji nû ve bên vejandin)? Ev, vegereke (ku îhtîmala pêkanîna wê) pir dûr e.”

**4.** Muheqeq em dizanin ka erd ji wan çi kêm kiriye (û bedenên wan di nava axê de çawa rizîyaye). Li cem me Kitêbeke (ku her tişt tê de nivisî û) parêzkar heye.

**5.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, dema ku heq ji wan re hatibû ew derewandin. Ew, di rewşeke tevlîhev/hevnegirtî de ne.

**6.** Ma ew qet li esmana di ser xwe re nanêrin? Me ew çawa ava kir û xemiland. Qet tu qelşa wê jî tune.

**7.** Me erd jî raxistîye û tê de (ji çiyan) qazixên/singên nehejan çikandîye û ji her cureya gihayên dilkêş cot bi cot heşîn kirine.

**8.** Ji bo ew evdên ku berê xwe didin (Allah, qudreta wî) bibînin û (li ser tefekkur bikin û) şîret bigirin…

سُورَةُ قٓ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسٌ وَأَرْبَعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

قٓ وَالْقُرْاٰنِ الْمَج۪يدِ ﴿١﴾ بَلْ عَجِبُٓوا اَنْ جَٓاءَهُمْ مُنْذِرٌ مِنْهُمْ فَقَالَ
الْكَافِرُونَ هٰذَا شَيْءٌ عَج۪يبٌ ﴿٢﴾ ءَاِذَا مِتْنَا وَكُنَّا تُرَابًا ذٰلِكَ رَجْعٌ بَع۪يدٌ ﴿٣﴾
قَدْ عَلِمْنَا مَا تَنْقُصُ الْاَرْضُ مِنْهُمْ وَعِنْدَنَا كِتَابٌ حَف۪يظٌ ﴿٤﴾ بَلْ
كَذَّبُوا بِالْحَقِّ لَمَّا جَٓاءَهُمْ فَهُمْ ف۪ٓي اَمْرٍ مَر۪يجٍ ﴿٥﴾ اَفَلَمْ يَنْظُرُٓوا
اِلَى السَّمَٓاءِ فَوْقَهُمْ كَيْفَ بَنَيْنَاهَا وَزَيَّنَّاهَا وَمَا لَهَا مِنْ فُرُوجٍ ﴿٦﴾
وَالْاَرْضَ مَدَدْنَاهَا وَاَلْقَيْنَا ف۪يهَا رَوَاسِيَ وَاَنْبَتْنَا ف۪يهَا مِنْ كُلِّ زَوْجٍ
بَه۪يجٍ ﴿٧﴾ تَبْصِرَةً وَذِكْرٰى لِكُلِّ عَبْدٍ مُن۪يبٍ ﴿٨﴾ وَنَزَّلْنَا مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً
مُبَارَكًا فَاَنْبَتْنَا بِه۪ جَنَّاتٍ وَحَبَّ الْحَص۪يدِ ﴿٩﴾ وَالنَّخْلَ بَاسِقَاتٍ لَهَا
طَلْعٌ نَض۪يدٌ ﴿١٠﴾ رِزْقًا لِلْعِبَادِ وَاَحْيَيْنَا بِه۪ بَلْدَةً مَيْتًا كَذٰلِكَ الْخُرُوجُ ﴿١١﴾
كَذَّبَتْ قَبْلَهُمْ قَوْمُ نُوحٍ وَاَصْحَابُ الرَّسِّ وَثَمُودُ ﴿١٢﴾ وَعَادٌ وَفِرْعَوْنُ
وَاِخْوَانُ لُوطٍ ﴿١٣﴾ وَاَصْحَابُ الْاَيْكَةِ وَقَوْمُ تُبَّعٍ كُلٌّ كَذَّبَ الرُّسُلَ فَحَقَّ
وَع۪يدِ ﴿١٤﴾ اَفَعَي۪ينَا بِالْخَلْقِ الْاَوَّلِ بَلْ هُمْ ف۪ي لَبْسٍ مِنْ خَلْقٍ جَد۪يدٍ ﴿١٥﴾

**9.** Me ji esman aveke bi bereket daxist û bi wê bexçeyan û teneyên/hebên tên çinîn heşîn kir.

**10.** Bi gûşîyên wan ên ku yek di ser yekî re ye darên xurmeyan jî…

**11.** Ji bo ku ji evdan re bibe riziq… Me bi wê (avê) heyat da welatekî hişkemirî. Vaye derketin (a ji goran) jî wisan e.

**12.** Berîya wan qewmê Nûh û xelkê Ress û (qewmê) Semûd jî derewandibûn.

**13.** Ad û Fîrewn û birayên Lût jî.

**14.** Xelkê Eyke û qewmê Tubba’ jî. Hemûyan pêxemberan derewandin û waîda/tehdîda (ezabê) min li ser wan heq bû.

**15.** Erê ma qey em di xuliqandina pêşîn de bê hêz/aciz mane (ku quweta me negihîje vejîna nû)? Bi rastî ew, di xuliqandina (di vejîna) nû de di gumanê de ne.

وَلَقَدْ خَلَقْنَا الْاِنْسَانَ وَنَعْلَمُ مَا تُوَسْوِسُ بِهِ نَفْسُهُ وَنَحْنُ اَقْرَبُ اِلَيْهِ
مِنْ حَبْلِ الْوَرِيدِ ﴿١٦﴾ اِذْ يَتَلَقَّى الْمُتَلَقِّيَانِ عَنِ الْيَمِينِ وَعَنِ الشِّمَالِ
قَعِيدٌ ﴿١٧﴾ مَا يَلْفِظُ مِنْ قَوْلٍ اِلَّا لَدَيْهِ رَقِيبٌ عَتِيدٌ ﴿١٨﴾ وَجَٓاءَتْ سَكْرَةُ
الْمَوْتِ بِالْحَقِّ ذٰلِكَ مَا كُنْتَ مِنْهُ تَحِيدُ ﴿١٩﴾ وَنُفِخَ فِي الصُّورِ
ذٰلِكَ يَوْمُ الْوَعِيدِ ﴿٢٠﴾ وَجَٓاءَتْ كُلُّ نَفْسٍ مَعَهَا سَٓائِقٌ وَشَهِيدٌ ﴿٢١﴾
لَقَدْ كُنْتَ فِي غَفْلَةٍ مِنْ هٰذَا فَكَشَفْنَا عَنْكَ غِطَٓاءَكَ فَبَصَرُكَ الْيَوْمَ
حَدِيدٌ ﴿٢٢﴾ وَقَالَ قَرِينُهُ هٰذَا مَا لَدَيَّ عَتِيدٌ ﴿٢٣﴾ اَلْقِيَا فِي جَهَنَّمَ كُلَّ
كَفَّارٍ عَنِيدٍ ﴿٢٤﴾ مَنَّاعٍ لِلْخَيْرِ مُعْتَدٍ مُرِيبٍ ﴿٢٥﴾ اَلَّذِي جَعَلَ مَعَ اللّٰهِ
اِلٰهًا اٰخَرَ فَاَلْقِيَاهُ فِي الْعَذَابِ الشَّدِيدِ ﴿٢٦﴾ قَالَ قَرِينُهُ رَبَّنَا مَٓا اَطْغَيْتُهُ
وَلٰكِنْ كَانَ فِي ضَلَالٍ بَعِيدٍ ﴿٢٧﴾ قَالَ لَا تَخْتَصِمُوا لَدَيَّ وَقَدْ قَدَّمْتُ
اِلَيْكُمْ بِالْوَعِيدِ ﴿٢٨﴾ مَا يُبَدَّلُ الْقَوْلُ لَدَيَّ وَمَٓا اَنَا بِظَلَّامٍ لِلْعَبِيدِ ﴿٢٩﴾
يَوْمَ نَقُولُ لِجَهَنَّمَ هَلِ امْتَلَأْتِ وَتَقُولُ هَلْ مِنْ مَزِيدٍ ﴿٣٠﴾ وَاُزْلِفَتِ
الْجَنَّةُ لِلْمُتَّقِينَ غَيْرَ بَعِيدٍ ﴿٣١﴾ هٰذَا مَا تُوعَدُونَ لِكُلِّ اَوَّابٍ حَفِيظٍ ﴿٣٢﴾
مَنْ خَشِيَ الرَّحْمٰنَ بِالْغَيْبِ وَجَٓاءَ بِقَلْبٍ مُنِيبٍ ﴿٣٣﴾ اُدْخُلُوهَا
بِسَلَامٍ ذٰلِكَ يَوْمُ الْخُلُودِ ﴿٣٤﴾ لَهُمْ مَا يَشَٓاؤُنَ فِيهَا وَلَدَيْنَا مَزِيدٌ ﴿٣٥﴾

**16.** Sond be, me însan xuliqand û nefsa wî çi wasewasê dide wî em çêtir dizanin. Em jê re ji rahjîyana/ji şahreha wî nêztirin.

**17.** Li rast û çepê wî (du melaîketê) runiştî û nivîskar (hene).

**18.** Lehzeya ku peyvekê bibêje, li cem wî çavnêreke amade heye.

**19.** Serxweşbûna mirinê (sekerat) wek heq tê. (Û ji însan re tê gotin:) “Ew tiştê ku tu jê direvî, ha ev bixwe ye!”

**20.** Li sûrê tê pifkirin. Ev, roja ku wê waîdê min/tehdîdên min (pêk bên) e.

**21.** Her nefs, bi ajovanekî (ku wî bi qada mahşere ve dajo) û bi şahidekî (ku şahidî bi amelên wî dike) re hatîye.

**22.** Sond be ku tu ji vêya di xefletê de bûyî. Me îro perda te (ya ku ji dîtina rastîyê re dibe asteng) rakiriye. Êdî îro dîtina te (wek hesin (tuj e).

**23.** (Melaîketê) ligel wî dibêje: “Ha ev (bi amelên xwe yên xerab a ku min heta îro qeyd kiriye) li cem min amade ye!”

**24.** “Her kafirê rikdar bavêjin cehennemê!”

**25.** “Ew kesê ku ji xêran re dibe asteng û ji hedê xwe borîye û gumankar e.”

**26.** “Ew ê ku; ligel Allah ji xwe re îlâhekî din girtîye. Wî bavêjin nava ezabekî dijwar.”

**27.** (Şeytanê averêker ya) ligel wî dibêje: “Rabbê me! Min ew bitir/har nekiriye. Lê ew, di xerifîtîyeke dûr de bû.”

**28.** Dibêje: “Li cem min bi hev nekevin û nîqaşê nekin. Min berê de hûn bi waîda/tehdîda xwe hişyar kiribû.”

**29.** “Li cem min peyv nayê guherandin û ez ne ew im ku zilim li evdên xwe bikim.”

**30.** Wê rojê em ji cehennemê re dibêjin: “Ma tu tije bûyî?” Ew jî wiha dibêje: “Ma hê zêdetir tune?”

**31.** Cennet, ji Mutteqîyan re ne dûr e, hatîye nêzîkkirin.

**32.** Ev, ji her yekî ji we ku berê xwe daye Allah (û hudûdên wî) diparêze re ya ku hatîye weadkirin e.

**33.** (Ji bo) ew kesê di xeybê de (digel ku nabîne û li cihê ku tu kes ew nedîtîye) de ji Rahmân ditirse û bi qelbekî selîm berê xwe daye Allah re (hatîye amadekirin).

**34.** Bi selametî têkevin wir. Ev, roja ebedîyetê ye.

**35.** Li wê derê her tiştê dixwazin ji wan re ye. Li cem me zêdetir jî heye.

وَكَمْ اَهْلَكْنَا قَبْلَهُمْ مِنْ قَرْنٍ هُمْ اَشَدُّ مِنْهُمْ بَطْشًا فَنَقَّبُوا
فِي الْبِلَادِۜ هَلْ مِنْ مَحِيصٍ ﴿٣٦﴾ اِنَّ فِي ذٰلِكَ لَذِكْرٰى لِمَنْ كَانَ لَهُ قَلْبٌ
اَوْ اَلْقَى السَّمْعَ وَهُوَ شَهِيدٌ ﴿٣٧﴾ وَلَقَدْ خَلَقْنَا السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ
وَمَا بَيْنَهُمَا فِي سِتَّةِ اَيَّامٍۗ وَمَا مَسَّنَا مِنْ لُغُوبٍ ﴿٣٨﴾ فَاصْبِرْ
عَلٰى مَا يَقُولُونَ وَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ قَبْلَ طُلُوعِ الشَّمْسِ وَقَبْلَ الْغُرُوبِۚ ﴿٣٩﴾
وَمِنَ الَّيْلِ فَسَبِّحْهُ وَاَدْبَارَ السُّجُودِ ﴿٤٠﴾ وَاسْتَمِعْ يَوْمَ يُنَادِ الْمُنَادِ
مِنْ مَكَانٍ قَرِيبٍۙ ﴿٤١﴾ يَوْمَ يَسْمَعُونَ الصَّيْحَةَ بِالْحَقِّۜ ذٰلِكَ يَوْمُ
الْخُرُوجِ ﴿٤٢﴾ اِنَّا نَحْنُ نُحْيِي وَنُمِيتُ وَاِلَيْنَا الْمَصِيرُۙ ﴿٤٣﴾ يَوْمَ تَشَقَّقُ
الْاَرْضُ عَنْهُمْ سِرَاعًاۜ ذٰلِكَ حَشْرٌ عَلَيْنَا يَسِيرٌ ﴿٤٤﴾ نَحْنُ اَعْلَمُ بِمَا
يَقُولُونَ وَمَٓا اَنْتَ عَلَيْهِمْ بِجَبَّارٍ فَذَكِّرْ بِالْقُرْاٰنِ مَنْ يَخَافُ وَعِيدِ ﴿٤٥﴾

سُورَةُ الذَّارِيَاتِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سِتُّونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
وَالذَّارِيَاتِ ذَرْوًاۙ ﴿١﴾ فَالْحَامِلَاتِ وِقْرًاۙ ﴿٢﴾ فَالْجَارِيَاتِ يُسْرًاۙ ﴿٣﴾
فَالْمُقَسِّمَاتِ اَمْرًاۙ ﴿٤﴾ اِنَّمَا تُوعَدُونَ لَصَادِقٌۙ ﴿٥﴾ وَاِنَّ الدِّينَ لَوَاقِعٌۜ ﴿٦﴾

**36.** Me berîya wan, gelek qewmên ji wan bihêztir helak kirine. Wan, welatan (bi kolanê û bi çandinê û bi lêgerînê) qulo milo kirin. (Digel van hemû hêz û îmkanan ka ji mirinê) reva wan heye?
**37.** Bêguman di vê de, ji bo kesê (xwedî) qelbekî (aqilmend) û wek şahid (bîrewer) guhdarî dike re şîret heye.
**38.** Sond be, me erd û asîman û yên di navbera herduyan de di şeş rojan de xuliqand. Û tu westandin/betilandin jî negihîşte me.
**39.** Tu li hemberî gotinên wan sebir bike. Berî hilatina rojê û berî avabûna wê hemdê Rabbê xwe bike û wî ji her kêmasîyan tenzîh bike.
**40.** (Demekê) ji şevê de û di piştî secdeyan de jî wî tesbîh bike.
(Ji bo helwesta rabbanî ya li dijî ezîyetên muşrîkan bnr. 20/Tâ-Hâ, 130.)
**41.** Tu baldar be/guhê xwe bide wê roja ku bangvan ji cihekî nêzîk ve gazî dike.
**42.** Ew roj, dê ew qêrîna heq (pifkirina sûrê) seh bikin. Ha ev, roja derketina (ji goran) e.
**43.** Bêguman em, divejînin û dimirînin. Û veger bi bal me ve ye.
**44.** Wê rojê, erd wê (li ser wan) şeq bibe û vebe. Wê bi lez (ji goran) derkevin. Ha ev, ji bo me civandineke/heşreke hêsan e.
**45.** Em bi gotinên wan (ya li dinyayê) pir baş dizanin. Tu li ser wan ne zordar î. Tu wan kesên ku ji waîdê/tehdîdê min ditirsin re bi vê Quranê şîret bike.

## 51. SÛREYA ZÂRIYÂT

*(Sûreya Zâriyât, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û şêst (60) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya pêncî û yekemîn e. Navê xwe ji peyva "Zâriyât" distîne ku ew jî di ayeta yekemîn de dibore û tê ser maneya "ba" ya ku dide ber xwe û radike dibe. Sûreya Zâriyât li ser sê esasên îslamê disekine ku ew jî wehdanîyeta Allah (ac) û jiyana axîretê û rîsalet e. Pêkhatina roja qiyametê û rewşa kesên mûmîn û qiseya Mûsa (as) û Îbrahîm (as) pêxember û rewş û aqûbeta qewmên Ad û Semûd û qewmê Nûh (as) û kesên zilimkar jî ji mijarên sûreya Zâriyât in.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bi wê (bayên ku) toz û dûman serûbinî hev dikin,
**2.** Bi (ewrên) bar (av) hilgirtî ne,
**3.** Bi (barbirên/wesaîtên) bi hêsanî diherikin,
**4.** Bi wan (melaîket) ên îşan/karan parve dikin re sond be.
**5.** Bêguman ya ku li we hatîye weadkirin heq û rast e.
**6.** Qet tu guman tune ku dîn/hisab muheqeq wê pêk bê.

وَالسَّمَٓاءِ ذَاتِ الْحُبُكِۙ ﴿٧﴾ اِنَّكُمْ لَفٖي قَوْلٍ مُخْتَلِفٍۙ ﴿٨﴾ يُؤْفَكُ عَنْهُ
مَنْ اُفِكَؕ ﴿٩﴾ قُتِلَ الْخَرَّاصُونَۙ ﴿١٠﴾ اَلَّذٖينَ هُمْ فٖي غَمْرَةٍ سَاهُونَۙ ﴿١١﴾
يَسْـَٔلُونَ اَيَّانَ يَوْمُ الدّٖينِؕ ﴿١٢﴾ يَوْمَ هُمْ عَلَى النَّارِ يُفْتَنُونَ ﴿١٣﴾
ذُوقُوا فِتْنَتَكُمْؕ هٰذَا الَّذٖي كُنْتُمْ بِهٖ تَسْتَعْجِلُونَ ﴿١٤﴾ اِنَّ الْمُتَّقٖينَ
فٖي جَنَّاتٍ وَعُيُونٍۙ ﴿١٥﴾ اٰخِذٖينَ مَٓا اٰتٰيهُمْ رَبُّهُمْؕ اِنَّهُمْ كَانُوا قَبْلَ ذٰلِكَ
مُحْسِنٖينَؕ ﴿١٦﴾ كَانُوا قَلٖيلًا مِنَ الَّيْلِ مَا يَهْجَعُونَ ﴿١٧﴾ وَبِالْاَسْحَارِ
هُمْ يَسْتَغْفِرُونَ ﴿١٨﴾ وَفٖٓي اَمْوَالِهِمْ حَقٌّ لِلسَّٓائِلِ وَالْمَحْرُومِ ﴿١٩﴾
وَفِي الْاَرْضِ اٰيَاتٌ لِلْمُوقِنٖينَۙ ﴿٢٠﴾ وَفٖٓي اَنْفُسِكُمْؕ اَفَلَا تُبْصِرُونَ ﴿٢١﴾
وَفِي السَّمَٓاءِ رِزْقُكُمْ وَمَا تُوعَدُونَ ﴿٢٢﴾ فَوَرَبِّ السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِ
اِنَّهُ لَحَقٌّ مِثْلَ مَٓا اَنَّكُمْ تَنْطِقُونَ ﴿٢٣﴾ هَلْ اَتٰيكَ حَدٖيثُ ضَيْفِ
اِبْرٰهٖيمَ الْمُكْرَمٖينَۢ ﴿٢٤﴾ اِذْ دَخَلُوا عَلَيْهِ فَقَالُوا سَلَامًاؕ قَالَ سَلَامٌۚ قَوْمٌ
مُنْكَرُونَ ﴿٢٥﴾ فَرَاغَ اِلٰٓى اَهْلِهٖ فَجَٓاءَ بِعِجْلٍ سَمٖينٍۙ ﴿٢٦﴾ فَقَرَّبَهُٓ اِلَيْهِمْ
قَالَ اَلَا تَأْكُلُونَۘ ﴿٢٧﴾ فَاَوْجَسَ مِنْهُمْ خٖيفَةًؕ قَالُوا لَا تَخَفْؕ وَبَشَّرُوهُ
بِغُلَامٍ عَلٖيمٍ ﴿٢٨﴾ فَاَقْبَلَتِ امْرَاَتُهُ فٖي صَرَّةٍ فَصَكَّتْ وَجْهَهَا وَقَالَتْ
عَجُوزٌ عَقٖيمٌ ﴿٢٩﴾ قَالُوا كَذٰلِكِۙ قَالَ رَبُّكِؕ اِنَّهُ هُوَ الْحَكٖيمُ الْعَلٖيمُ ﴿٣٠﴾

**7.** Sond bi wê esmana ku (bi rêgeh û stêrk û bilindahîya bê sitûn) rewnaq/dilkêş e.

**8.** Hûn (li dij pêxember û Quranê de) di nav gotinên hevnegirtî û nakokî de ne.

**9.** Ew ê (ji îmanê hatîye mehrûm kirin) jê tê vegerandin.

**10.** Qehr (û mirin) li ser sawgerên gumanker be!

**11.** Ew in ku di nava cahiltî û korîtîyê de xafil in.

**12.** Ew dipirsin “Ka, roja dîn/Qiyamet kengê ye?”

**13.** Ew roj, di agir de tên şewitandin û ezab li wan tên kirin.

**14.** (Ji wan re tê gotin:) “Fitneya (ezaba) xwe bitamînin. Ev, ew ezab e ku we (li dinyayê digot “Ka ew ezab?” û) we bi lez dixwest.

**15.** Qet tu guman tune ku ew ên mutteqî, di cennetan de û li ser kanîyan in.

**16.** Tişt (nîmet) ên ku Rabbê wan daye wan, werdigirin. Lewre ew berîya vêga ji wan ên muhsîn/ji kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin bûn.

**17.** Ew, di şevê de pir hindik radizan.

**18.** Wan di dema berbangê/serê sibehê de îstîxfarê dikirin.

**19.** Di malê wan de ji parsek û xîzanan re parek hebû.

**20.** Li ser rûyê erdê ji wan ên bi yeqîn îman anîne re ayet hene.

**21.** Di nefsên we de jî... Ma hûn nabînin?

**22.** Rizqê we û tişt (xêr) ên ji we re hatine weadkirin li asîmana ye.

**23.** Sond bi Rabbê erd û esmanan be ku; (tiştên li we hatine weadkirin) qet tu guman tune wekî axaftina we heq e.

**24.** Ma qey agahîya mêvanên Îbrahîm, yên birûmet negihîşte te?

**25.** Wê demê hatibûn cem wî û gotin: “Silav”. Wî jî wiha gotibû: “Silav! Hûn, civateke nenas in.”

**26.** Hema bi lez çû cem ehlê xwe û goştê golikek qelew anî.

**27.** Li ber wan danî û ji wan re gotibû: “Ka hûn naxwin?”

**28.** (Dema dît ku naxwin) tirsek kete dilê wî. Gotibûn: “Netirse!” Û mizgîna zarokekî zana dabûnê.

**29.** Jina wî bi qêrîn (a şaşwazîyê) berê xwe da (wan) û li rûyê xwe dabû. Gotibû: “(Ew) pîremêr û (ez jî) pîrejin. (Digel vê zarok ha?!)”

**30.** Gotibûn: “Ha wisan e... Rabbê te wiha ferman kir. Bêguman ew, (xwedî hikum û hikmet) Hakîm û (zanayê her tiştî) Alîm e.

قَالَ فَمَا خَطْبُكُمْ اَيُّهَا الْمُرْسَلُونَ ﴿٣١﴾ قَالُوا اِنَّا اُرْسِلْنَا اِلٰى قَوْمٍ
مُجْرِمِينَ ﴿٣٢﴾ لِنُرْسِلَ عَلَيْهِمْ حِجَارَةً مِنْ طِينٍ ﴿٣٣﴾ مُسَوَّمَةً عِنْدَ
رَبِّكَ لِلْمُسْرِفِينَ ﴿٣٤﴾ فَاَخْرَجْنَا مَنْ كَانَ فِيهَا مِنَ الْمُؤْمِنِينَ ﴿٣٥﴾
فَمَا وَجَدْنَا فِيهَا غَيْرَ بَيْتٍ مِنَ الْمُسْلِمِينَ ﴿٣٦﴾ وَتَرَكْنَا فِيهَا اٰيَةً لِلَّذِينَ
يَخَافُونَ الْعَذَابَ الْاَلِيمَ ﴿٣٧﴾ وَفِي مُوسٰى اِذْ اَرْسَلْنَاهُ اِلٰى فِرْعَوْنَ
بِسُلْطَانٍ مُبِينٍ ﴿٣٨﴾ فَتَوَلّٰى بِرُكْنِهِ وَقَالَ سَاحِرٌ اَوْ مَجْنُونٌ ﴿٣٩﴾
فَاَخَذْنَاهُ وَجُنُودَهُ فَنَبَذْنَاهُمْ فِي الْيَمِّ وَهُوَ مُلِيمٌ ﴿٤٠﴾ وَفِي عَادٍ
اِذْ اَرْسَلْنَا عَلَيْهِمُ الرِّيحَ الْعَقِيمَ ﴿٤١﴾ مَا تَذَرُ مِنْ شَيْءٍ اَتَتْ عَلَيْهِ
اِلَّا جَعَلَتْهُ كَالرَّمِيمِ ﴿٤٢﴾ وَفِي ثَمُودَ اِذْ قِيلَ لَهُمْ تَمَتَّعُوا حَتّٰى
حِينٍ ﴿٤٣﴾ فَعَتَوْا عَنْ اَمْرِ رَبِّهِمْ فَاَخَذَتْهُمُ الصَّاعِقَةُ وَهُمْ يَنْظُرُونَ ﴿٤٤﴾
فَمَا اسْتَطَاعُوا مِنْ قِيَامٍ وَمَا كَانُوا مُنْتَصِرِينَ ﴿٤٥﴾ وَقَوْمَ نُوحٍ مِنْ قَبْلُ
اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمًا فَاسِقِينَ ﴿٤٦﴾ وَالسَّمَاءَ بَنَيْنَاهَا بِاَيْدٍ وَاِنَّا لَمُوسِعُونَ ﴿٤٧﴾
وَالْاَرْضَ فَرَشْنَاهَا فَنِعْمَ الْمَاهِدُونَ ﴿٤٨﴾ وَمِنْ كُلِّ شَيْءٍ خَلَقْنَا
زَوْجَيْنِ لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ ﴿٤٩﴾ فَفِرُّوا اِلَى اللّٰهِ اِنِّي لَكُمْ مِنْهُ نَذِيرٌ
مُبِينٌ ﴿٥٠﴾ وَلَا تَجْعَلُوا مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ اِنِّي لَكُمْ مِنْهُ نَذِيرٌ مُبِينٌ ﴿٥١﴾




**31.** Gotibû: “Gelî qasidan/melaîketan! Ma karê (wezîfeya) we çi ye?

**32.** Gotin: “Bêguman em ji qewmekî mucrîm/sûcdar û gunehkar re hatine şandin.”

**33.** “Ji bo ku em di ser wan de kevirên ji herîyê (hatine pijandin) bavêjin.”

**34.** “Ew (kevir) li cem Rabbê te ji bo musrifên ji hedê xwe borî re nîşankirî ne.”

**35.** Me ew kesên mûmîn ji wê derê derxistin.

**36.** Me li wê derê ji yek malbatekê pê ve tu kesê muslîm/ên ku şirkê terk dikin û li ser tewhîdê berê xwe didin Allah, nedît.

**37.** Me li wê derê, ji wan kesên ku ji ezabê biêş û jan ditirsin re (ji bo îbretê) ayetek hişt.

**38.** Di (qiseya) Mûsa de (jî ayetên ku îbret jê bên girtin hene). Me ew bi delîleke vikîvekirî bi bal Fîrewn de şandibû.

**39.** Wî bi hemû hêza xwe rû vegerand û wiha got: “(Ew) sêhrbaz an jî dîn e.”

**40.** Me bi wî û artêşa/ordîya wî girt û avête behrê. Ew, mirovekî lomekirî bû.

**41.** Di qewmê Ad de jî (ayet hene). Dema me li ser wan bayekî aqîm (ku her tiştî serûbin dike) şand.

**42.** Her çi tiştê di ser de derbas dibe nedihişt û wekî gîyayê hişk berba dikir.

**43.** Di qewmê Semud de jî (ayet hene). Dema ji wan re wiha hatibû gotin: “Heta demeke diyarkirî sûdmend bibin.”

**44.** Wan dijraberîya emrê Rabbê xwe kirin. Dema zîqdinêrtin birûsk li wan da û bi wan girt.

**45.** Ne dikaribûn rabin ser pîya û ne jî alîkarîyek didîtin (da ku ji ezabê re bibe asteng).

**46.** Berî vêga me qewmê Nûh jî (helak kiribû). Bêguman ew, qewmekî fasiq bûn.

**47.** Me asîman bi quwetekî pir mezin ava kir. Û em firehkarên wê ne.

**48.** Erd jî me raxist. Em çi xweş raxer in.

**49.** Me ji her tiştî cot bi cot xuliqand. Hêvî dibe ku hûn şîret bigirin.

**50.** Herwiha (ji her qeydên wekî pût û hezkirina dinyayê û malbat û zordestîya gel ku we ji Allah dûr dike xelas bibin û) bi bal Allah ve birevin. Qet tu guman tune ku ez, hişyarkerekî vikîvekirî û ji terefê wî ve (hatime şandî) me.

**51.** Ligel Allah ji xwe re îlâhekî din negirin. Qet tu guman tune ku ez, hişyarkerekî vikîvekirî û ji terefê wî ve (hatime şandî) me.

كَذٰلِكَ مَٓا اَتَى الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْ مِنْ رَسُولٍ اِلَّا قَالُوا سَاحِرٌ
اَوْ مَجْنُونٌ ﴿٥٢﴾ اَتَوَاصَوْا بِه۪ۚ بَلْ هُمْ قَوْمٌ طَاغُونَ ﴿٥٣﴾ فَتَوَلَّ عَنْهُمْ
فَمَٓا اَنْتَ بِمَلُومٍۘ ﴿٥٤﴾ وَذَكِّرْ فَاِنَّ الذِّكْرٰى تَنْفَعُ الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٥٥﴾
وَمَا خَلَقْتُ الْجِنَّ وَالْاِنْسَ اِلَّا لِيَعْبُدُونِ ﴿٥٦﴾ مَٓا اُر۪يدُ مِنْهُمْ مِنْ رِزْقٍ
وَمَٓا اُر۪يدُ اَنْ يُطْعِمُونِ ﴿٥٧﴾ اِنَّ اللّٰهَ هُوَ الرَّزَّاقُ ذُو الْقُوَّةِ الْمَت۪ينُ ﴿٥٨﴾
فَاِنَّ لِلَّذ۪ينَ ظَلَمُوا ذَنُوبًا مِثْلَ ذَنُوبِ اَصْحَابِهِمْ فَلَا يَسْتَعْجِلُونِ ﴿٥٩﴾
فَوَيْلٌ لِلَّذ۪ينَ كَفَرُوا مِنْ يَوْمِهِمُ الَّذ۪ي يُوعَدُونَ ﴿٦٠﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالطُّورِۙ ﴿١﴾ وَكِتَابٍ مَسْطُورٍۙ ﴿٢﴾ ف۪ي رَقٍّ مَنْشُورٍۙ ﴿٣﴾ وَالْبَيْتِ الْمَعْمُورِۙ ﴿٤﴾
وَالسَّقْفِ الْمَرْفُوعِۙ ﴿٥﴾ وَالْبَحْرِ الْمَسْجُورِۙ ﴿٦﴾ اِنَّ عَذَابَ رَبِّكَ لَوَاقِعٌۙ ﴿٧﴾
مَا لَهُ مِنْ دَافِعٍۙ ﴿٨﴾ يَوْمَ تَمُورُ السَّمَٓاءُ مَوْرًاۙ ﴿٩﴾ وَتَس۪يرُ الْجِبَالُ سَيْرًاۜ ﴿١٠﴾
فَوَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّب۪ينَۙ ﴿١١﴾ اَلَّذ۪ينَ هُمْ ف۪ي خَوْضٍ يَلْعَبُونَۢ ﴿١٢﴾ يَوْمَ
يُدَعُّونَ اِلٰى نَارِ جَهَنَّمَ دَعًّاۜ ﴿١٣﴾ هٰذِهِ النَّارُ الَّت۪ي كُنْتُمْ بِهَا تُكَذِّبُونَ ﴿١٤﴾

**52.** Ew ên berîya wan jî her çiqas pêxemberek ji wan re hatibe (wekî ku ev dikin) jê re gotin: “Sêhrbaz an jî dîn.”
**53.** Gelo ew (peyvên derewandinê û helwestên neyartîya li hemberî pêxemberan) ji hevdu re wesîyetê dikin? (Heta ku her qewim yek bi yek heman tiştan dibêjin.) Berevajî ew, kesên (wekî taxût) bitir in. (Bitirtîya wan ew sewqê gotina tiştên wekehev dike.)
**54.** Ji wan rû vegerîne. Êdî lome ji te nayê kirin.
**55.** Bi bîr bîne/Şîret bike! Lewre bibîrxistin feyde dide mûmînan.
**56.** Bitenê ji bo ku îbadet li min bikin, min cin û însan xuliqandin.
(Meqseda xuliqandina însan tewhîd e. Tewhîd jî evdîtîya Allah (ac) û yekgirtina wî ya di îbadetê de ye. Tewhîd ew e ku; mirov nimêj û rojî û qurban û îbadetên xwe bi tenê ji Allah (ac) re bike û jiyana xwe bi tevahî li gor şerîeta Allah (ac) sererast bike û sitû ji emr û qanûnên wî re xwar bike. (Bnr. 1/Fatîhe, 5) Ji ber ku meqseda hebûna kesê mûmîn tewhîd e, divê ji bo wî rojeva serekîn û neguhêrbar jî herûdaîm tewhîd be. (Wekî din bnr. 38/Sâd, 27))
**57.** Ez tu rizqekî ji wan naxwazim û ez ji wan têrkirina xwe jî naxwazim.
**58.** Bêguman Allah, yê ku pirzêde riziq dide û xwedî quwet e (û yê ku qet tu tişt nikare wî binûhîne/biperitîne û metanetê dide mûmînan) Metîn e.
**59.** Bi rastî, ew ên zilimkar jî wekî hevalên wan ên (berîya wan) xwedî guneh in. Bila nelezînin. (Çawa ku ew ên berê ji ber gunehên xwe bi ezabê ketin, ev ên ha jî wê ber bi ezabê bikevin.)
**60.** Ji ber wê roja ku pê hatine tehdîdkirin, weyl li halê kafiran.



## 52. SÛREYA TÛR

*(Sûreya Tûr, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çil û neh (49) ayet e.)*

*Di Qur’anê de sûreya pêncî û duyemîn e. Tûr, navê wê çiyayê ye ku Allah (ac) bi Mûsa (as) re axivîye. Di ayeta yekemîn ya di vê sûreyê de qesem li vê çiyayê hatîye kirin. Ji ber vê yekê sûre, bi navê sûreya Tûr hatîye navandin. Di vê sûreyê de teswîra axîretê tê kirin da ku şiûra berpirsîyarî ya di însan de xurttir bibe. Herwisa îdîayên pûtperestan ya li dij heqîqetên ku wehîy xistîye holê rapêş dikin bi tevahî red dike û behsa aqûbeta wan dike. Sûreya Tûr di heman demê de kesên serata ji şirk û kûfrê xwe diparêzin wê bi ehlên xwe yên mûmîn re di nav nîmetên cennetê de bigihîjin hevdu vedibêje.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bi Tûrê (sond be).
**2.** Bi Kitêba ku rêz bi rêz hatîye nivîsandin,
**3.** (Ew Kitêb ku) di nava qaxizê raxistî/belavbûyî (de ye).
**4.** Bi Beytê Ma’mûr (ew beyta ku melaîketan bi tewafên xwe îmar kirine),
**5.** Bi banê/tawana bilindkirî,
**6.** Û bi behra hatîye pêxistin sond be ku,
**7.** Bêguman ezabê Rabbê te wê pêk bê
**8.** Qet tu kesê ku jê re bibe asteng tune.
**9.** Wê rojê asîman divegere û diheje.
**10.** Û çiyan bimeşekê dimeşin.
**11.** Ew roj, weyl li halê mukezzîban/derewkaran!
**12.** Ew in ku (di derewandina pêxember û tinazkarîya wî de) noq dibin û pêmijul in.
**13.** Wê roja ku ew bi bal agir ve bişîdet tên kişkişandin,
**14.** (Ji wan re tê gotin:) “Ha ev, ew agirê ku we diderewand e.”

اَفَسِحْرٌ هٰذَٓا اَمْ اَنْتُمْ لَا تُبْصِرُونَ ﴿١٥﴾ اِصْلَوْهَا فَاصْبِرُٓوا
اَوْ لَا تَصْبِرُواۚ سَوَٓاءٌ عَلَيْكُمْۜ اِنَّمَا تُجْزَوْنَ مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿١٦﴾
اِنَّ الْمُتَّقِينَ فِي جَنَّاتٍ وَنَعِيمٍۙ ﴿١٧﴾ فَاكِهِينَ بِمَٓا اٰتٰيهُمْ رَبُّهُمْۚ
وَوَقٰيهُمْ رَبُّهُمْ عَذَابَ الْجَحِيمِ ﴿١٨﴾ كُلُوا وَاشْرَبُوا هَنٖٓيـًٔا بِمَا كُنْتُمْ
تَعْمَلُونَۙ ﴿١٩﴾ مُتَّكِـٔينَ عَلٰى سُرُرٍ مَصْفُوفَةٍۚ وَزَوَّجْنَاهُمْ بِحُورٍ
عِينٍ ﴿٢٠﴾ وَالَّذِينَ اٰمَنُوا وَاتَّبَعَتْهُمْ ذُرِّيَّتُهُمْ بِاِيمَانٍ اَلْحَقْنَا بِهِمْ
ذُرِّيَّتَهُمْ وَمَٓا اَلَتْنَاهُمْ مِنْ عَمَلِهِمْ مِنْ شَيْءٍۜ كُلُّ امْرِئٍ بِمَا
كَسَبَ رَهِينٌ ﴿٢١﴾ وَاَمْدَدْنَاهُمْ بِفَاكِهَةٍ وَلَحْمٍ مِمَّا يَشْتَهُونَ ﴿٢٢﴾
يَتَنَازَعُونَ فِيهَا كَاْسًا لَا لَغْوٌ فِيهَا وَلَا تَاْثِيمٌ ﴿٢٣﴾ وَيَطُوفُ عَلَيْهِمْ
غِلْمَانٌ لَهُمْ كَاَنَّهُمْ لُؤْلُؤٌ مَكْنُونٌ ﴿٢٤﴾ وَاَقْبَلَ بَعْضُهُمْ
عَلٰى بَعْضٍ يَتَسَٓاءَلُونَ ﴿٢٥﴾ قَالُٓوا اِنَّا كُنَّا قَبْلُ فٖٓي اَهْلِنَا مُشْفِقِينَ ﴿٢٦﴾
فَمَنَّ اللّٰهُ عَلَيْنَا وَوَقٰينَا عَذَابَ السَّمُومِ ﴿٢٧﴾ اِنَّا كُنَّا مِنْ قَبْلُ
نَدْعُوهُۜ اِنَّهُ هُوَ الْبَرُّ الرَّحِيمُۚ ﴿٢٨﴾ فَذَكِّرْ فَمَٓا اَنْتَ بِنِعْمَتِ رَبِّكَ
بِكَاهِنٍ وَلَا مَجْنُونٍۜ ﴿٢٩﴾ اَمْ يَقُولُونَ شَاعِرٌ نَتَرَبَّصُ بِهٖ رَيْبَ
الْمَنُونِ ﴿٣٠﴾ قُلْ تَرَبَّصُوا فَاِنّٖي مَعَكُمْ مِنَ الْمُتَرَبِّصِينَۜ ﴿٣١﴾

**15.** “Erê ma ev jî dibe ku sêhr be? Nexwe qey hûn nabînin?”

**16.** “Bikevin wê derê. Êdî hûn dixwazin (ji ezabê re) sebir bikin û dixwazin sebir nekin, ji bo we yek e. Hûn ê bitenê berdêla/gerewa amelên xwe bigirin.”

**17.** Bêguman ew ên mutteqî di nava cennetan û nîmetan de ne.

**18.** Ew bi ya (nîmetên) ku Rabbê wan daye wan kêfxweş in. Rabbê wan ew ji ezabê cehennemê parastine.

**19.** “Di muqabilê amelên xwe de bi noşîcanî bixwin û vexwin.”

**20.** Li ser textên rêzerêzbûyî paldayî ne. Me ew bi horîyên çavxezal re zewicandine.

**21.** Ew ên îman anîne û zurîyeta wan jî li ser îmanê bûne tabiê wan, me zurîyeta wan jî daxilê wan kir û me ji amelên wan qet tu tiştî kêm nekir. Her kes di muqabilê amelê xwe de rehîn e. (Amelên ku kiriye wê aqubeta wî diyar bike.)

**22.** Ji goşt û fêkîyên ku dilê wan dibijîyê me zêde zêde da wan.

**23.** Li wê derê qedehan ji dest hev digirin. (Ji ber şeraba di qedehan de) ne axaftineke kelevajî dibêjin û ne jî karekî gunehkarîyê dikin.

**24.** Xizmetkarên wan li derdora wan digerin. Ew, her wekî durên di sedefên xwe de veşartî ne.

**25.** Berê xwe didin hev û ji hevdu dipirsin.

**26.** Dibêjin: “Bi rastî em berê de di nav malbata xwe de (ji ezab) bitirs bûn.”

**27.** “Allah li me lutûf kir û em ji ezabê semûm/ezabê diperitîne parast.”

**28.** “Bêguman me berê de jî jê re dûa dikir. Bi rastî ew, (yê ku pirzêde qencî dike) Berr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.”

**29.** Herwiha tu bi bîr bîne/şîret bike. Bi nimeta Rabbê xwe tu ne kâhin û ne jî dîn î.

**30.** Nexwe ew wiha dibêjin: “Ev, şairek e. Em çavnêrîya wî dikin da ku karesat/felaket bên serê wî (û em jê xelas bibin)?

**31.** Bibêje: “Çavnêrîyê bikin (em binêrin). Qet guman tune, ez jî bi we re Çavnêrîyê dikim.”

أَمْ تَأْمُرُهُمْ أَحْلَامُهُمْ بِهٰذَآ أَمْ هُمْ قَوْمٌ طَاغُونَ ﴿٣٢﴾ أَمْ يَقُولُونَ تَقَوَّلَهُ
بَلْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٣٣﴾ فَلْيَأْتُوا بِحَدِيثٍ مِثْلِهِٓ إِنْ كَانُوا صَادِقِينَ ﴿٣٤﴾
أَمْ خُلِقُوا مِنْ غَيْرِ شَيْءٍ أَمْ هُمُ الْخَالِقُونَ ﴿٣٥﴾ أَمْ خَلَقُوا السَّمٰوَاتِ وَالْأَرْضَ
بَلْ لَا يُوقِنُونَ ﴿٣٦﴾ أَمْ عِنْدَهُمْ خَزَآئِنُ رَبِّكَ أَمْ هُمُ الْمُصَيْطِرُونَ ﴿٣٧﴾
أَمْ لَهُمْ سُلَّمٌ يَسْتَمِعُونَ فِيهِ فَلْيَأْتِ مُسْتَمِعُهُمْ بِسُلْطَانٍ مُبِينٍ ﴿٣٨﴾ أَمْ لَهُ
الْبَنَاتُ وَلَكُمُ الْبَنُونَ ﴿٣٩﴾ أَمْ تَسْـَٔلُهُمْ أَجْرًا فَهُمْ مِنْ مَغْرَمٍ مُثْقَلُونَ ﴿٤٠﴾
أَمْ عِنْدَهُمُ الْغَيْبُ فَهُمْ يَكْتُبُونَ ﴿٤١﴾ أَمْ يُرِيدُونَ كَيْدًا فَالَّذِينَ كَفَرُوا
هُمُ الْمَكِيدُونَ ﴿٤٢﴾ أَمْ لَهُمْ إِلٰهٌ غَيْرُ اللّٰهِ سُبْحَانَ اللّٰهِ عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٤٣﴾
وَإِنْ يَرَوْا كِسْفًا مِنَ السَّمَآءِ سَاقِطًا يَقُولُوا سَحَابٌ مَرْكُومٌ ﴿٤٤﴾ فَذَرْهُمْ
حَتّٰى يُلَاقُوا يَوْمَهُمُ الَّذِي فِيهِ يُصْعَقُونَ ﴿٤٥﴾ يَوْمَ لَا يُغْنِي عَنْهُمْ كَيْدُهُمْ
شَيْـًٔا وَلَا هُمْ يُنْصَرُونَ ﴿٤٦﴾ وَإِنَّ لِلَّذِينَ ظَلَمُوا عَذَابًا دُونَ ذٰلِكَ وَلٰكِنَّ
أَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٤٧﴾ وَاصْبِرْ لِحُكْمِ رَبِّكَ فَإِنَّكَ بِأَعْيُنِنَا وَسَبِّحْ
بِحَمْدِ رَبِّكَ حِينَ تَقُومُ ﴿٤٨﴾ وَمِنَ الَّيْلِ فَسَبِّحْهُ وَإِدْبَارَ النُّجُومِ ﴿٤٩﴾

## سُورَةُ النَّجْمِ

مَكِّيَّةٌ وَهِيَ اثْنَتَانِ وَسِتُّونَ اٰيَةً

**32.** Gelo qey aqlê wan van (ramanan) li wan emir dike an jî ew qewmekî har/bitir in?

**33.** Nexwe ew wiha dibêjin: “Wî ev lihev anîye”? (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, ew îman naynin.

**34.** Eger ew rast dibêjin de bila (ew jî lihev bînin û) peyveke hevşêwe bînin (em binêrin).

**35.** Nexwe ew, (bê xaliq) hatine xuliqandin? An na qey xaliq ew bixwe ne?

**36.** Ma qey wan erd û esman xuliqandîye? Berevajî, li ser yeqînê îman naynin.

**37.** Nexwe xezîneyên Rabbê te li cem wan in? An jî hêza serwer/hâkim qey ew in ku her tiştî di bin kontrola xwe de digire?

**38.** An jî silmeke/derenceyeke wan heye ku (xwe pê dirêjî Mele-î A’lâ dikin û) guhdarîyê dikin? (Madem wisan e) de bila guhdarê wan delîleke vikîvekirî bînin (em binêrin).

**39.** Erê ma zarokên qîz/keç ên wî ne û kur yên we ne?

**40.** An jî qey tu heqekî ji wan dixwazî û heta ku ew jî ji ber vê deynê ketine bin barekî giran? (Qey ew ji ber tirsa destheqê nakevin îslâmê?)

**41.** An jî qey agahîya xeybê li cem wan e ku ew (li ser têkbirina te dek û dolav/senaryo) dinivîsin?

**42.** An jî qey dixwazin ku kemîn deynin? Lê ew ên dikevin kemînê kafir bixwe ne.

**43.** An jî qey ji xeynî Allah îlâhekî wan heye? Allah, ji tiştên ku şirîk çêdikin munezzeh e.

**44.** Eger (ji esmanan wek mucîze) bi ser wan de parîyek bikeve (dîsa jî îman naynin û) wê bibêjin: “Ev, ewrek e ku li ser hev kom bûye.”

**45.** (Madem ew îman naynin, nexwe) tu heta wê roja ku li ezab diqelibin wan di halê xwe de bihêle.

**46.** Ew roj, kêmîna ku danîne qet tu feyde nade wan û alîkarî jî li wan nayê kirin.

**47.** Bêguman ji bo zilimkaran, berîya vê jî ezabek heye. Lê belê pirên wan nizanin.

**48.** Li ser hukmê Rabbê xwe sebir bike. Lewre tu, li ber çavên me yî. Dema tu rabî jî Rabbê xwe bi hamd tesbîh bike.

(Ji bo helwesta rabbanî ya li dijî ezîyetên muşrîkan bnr. 20/Tâ-Hâ,130)

**49.** Di qismekî şevê de û piştî avabûna stêrkan de jî wî tesbîh bike.

## 53. SÛREYA NECM

*(Sûreya Necm, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û şêst û du (62) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya pêncî û sêyemîn e. Sûreya Necm navê xwe ji ayeta yekemîn sitendîye ku tê de bi sitêrkê sond tê xwarin. Li gorî rêza di sûreyê de li ser mijarên nubûwet û tewhîd û jiyana axîretê disekine. Behsa qûdret û pêwistîya evdîtî kirina ji Allah (ac) re dike. Ayetên 13. heta 18. têkildarê bûyera Mîracê ye.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالنَّجْمِ اِذَا هَوٰىۙ ﴿١﴾ مَا ضَلَّ صَاحِبُكُمْ وَمَا غَوٰىۚ ﴿٢﴾ وَمَا يَنْطِقُ
عَنِ الْهَوٰىۜ ﴿٣﴾ اِنْ هُوَ اِلَّا وَحْيٌ يُوحٰىۙ ﴿٤﴾ عَلَّمَهُ شَد۪يدُ الْقُوٰىۙ ﴿٥﴾
ذُو مِرَّةٍۜ فَاسْتَوٰىۙ ﴿٦﴾ وَهُوَ بِالْاُفُقِ الْاَعْلٰىۜ ﴿٧﴾ ثُمَّ دَنَا فَتَدَلّٰىۙ ﴿٨﴾
فَكَانَ قَابَ قَوْسَيْنِ اَوْ اَدْنٰىۚ ﴿٩﴾ فَاَوْحٰٓى اِلٰى عَبْدِه۪ مَٓا اَوْحٰىۜ ﴿١٠﴾
مَا كَذَبَ الْفُؤٰادُ مَا رَاٰى ﴿١١﴾ اَفَتُمَارُونَهُ عَلٰى مَا يَرٰى ﴿١٢﴾ وَلَقَدْ رَاٰهُ
نَزْلَةً اُخْرٰىۙ ﴿١٣﴾ عِنْدَ سِدْرَةِ الْمُنْتَهٰى ﴿١٤﴾ عِنْدَهَا جَنَّةُ الْمَأْوٰىۜ ﴿١٥﴾
اِذْ يَغْشَى السِّدْرَةَ مَا يَغْشٰىۙ ﴿١٦﴾ مَا زَاغَ الْبَصَرُ وَمَا طَغٰى ﴿١٧﴾ لَقَدْ
رَاٰى مِنْ اٰيَاتِ رَبِّهِ الْكُبْرٰى ﴿١٨﴾ اَفَرَاَيْتُمُ اللَّاتَ وَالْعُزّٰىۙ ﴿١٩﴾
وَمَنٰوةَ الثَّالِثَةَ الْاُخْرٰى ﴿٢٠﴾ اَلَكُمُ الذَّكَرُ وَلَهُ الْاُنْثٰى ﴿٢١﴾ تِلْكَ
اِذًا قِسْمَةٌ ض۪يزٰى ﴿٢٢﴾ اِنْ هِيَ اِلَّٓا اَسْمَٓاءٌ سَمَّيْتُمُوهَٓا اَنْتُمْ وَاٰبَٓاؤُ۬كُمْ
مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ بِهَا مِنْ سُلْطَانٍۜ اِنْ يَتَّبِعُونَ اِلَّا الظَّنَّ وَمَا تَهْوَى
الْاَنْفُسُۚ وَلَقَدْ جَٓاءَهُمْ مِنْ رَبِّهِمُ الْهُدٰىۜ ﴿٢٣﴾ اَمْ لِلْاِنْسَانِ مَا تَمَنّٰىۘ ﴿٢٤﴾
فَلِلّٰهِ الْاٰخِرَةُ وَالْاُو۫لٰىۚ ﴿٢٥﴾ وَكَمْ مِنْ مَلَكٍ فِي السَّمٰوَاتِ لَا تُغْن۪ي
شَفَاعَتُهُمْ شَيْـًٔا اِلَّا مِنْ بَعْدِ اَنْ يَأْذَنَ اللّٰهُ لِمَنْ يَشَٓاءُ وَيَرْضٰى ﴿٢٦﴾

**1.** Sond bi stêrka dema diçe ava ku,

**2.** Hevalê we nexerifîye û bitir/xawî nebûye.

**3.** Ew, ji hewayê napeyive.

**4.** (Axaftinên wî,) ji wehîya ku jê re tê wehîykirin pê ve ne tiştekî din e.

**5.** Yê xwedî hêzekî dijwar (Cibrîl) ew (Qur'an) hînê wî kiriye.

**6.** Ew xwedî quweteke mezin e. Hema xwe rast kir.

**7.** Ew, li asmîna/ufûqa herî berz bû.

**8.** Axir ji bo baş nêzî wî (Muhammed) bibe xwe da ber/nêztir bû.

**9.** Herwiha (di navbera wan de) bi qasî du kevanan an jî herî nêztir (mesafeyek ma).

**10.** (Allah) ya ku wê ji evdê xwe re wehîy bike, wehîy kir.

**11.** Qelb ya ku dîtibû nederewand.

**12.** (Digel vê,) der heqê tiştên ku dîtîye de hûn ê pê re nîqaş bikin?

**13.** Sond be, di daketineke din de jî ew dîtibû.

**14.** Li cem Sidretu'l Muntehayê.

**15.** Hema li cem wê jî Cennetu'l Me'wa heye.

**16.** Wê demê dara Sidrê (bi xweşikahîyên wisan ku kesekî nedîtîye) nuxamtî bû.

**17.** Çav (ji ber edeba xwe bi rast û çep ve) neşemitî û (ji derê ya divê ku bibîne jî) neborî.

**18.** Sond be ku ew, hin ji ayetên Rabbê te yên herî mezin dîtin.

**19.** Erê ma we Lat û Uzza dîtin? (Ew Allahê ku qudreta wî bêdawî ye/herherî ye li ku û pûtên ji xwe bixwe re qet tu feyda wan tune li ku derê?)

**20.** Û sêyemînê wan Menat.

(Lat, Menat û Uzza, pûtên muşrîkan bûn. Perestî li wan dikirin û pêbawer bûn ku pûtên wan nêzî Allah (ac) in û wê şefaetê li wan bikin. Lat; di dema xwe de mirovekî salih bû û ji bo hacîyan xwarinên taybet amade dikir. Çaxê ev zat mir, gora wî tazîm kirin û bi demê re dest bi perestîya gora wî kirin. Gumbeta wî ji perçeya latekî neqişkirî û spî bû. Li ser wê xanîyek ava kiribûn û li derdora wê ji terefê Taîfîyan ve herêmeke pîroz hatibû pêkanîn û ji bo parastina wê derê bekçîyan tayîn kiribûn. Uzza jî dareke ku xanî li ser wê avakirî bû. Menat, pûtek bû ku Ewsîyan û Hezrecîyan perestîya wê dikirin. (Ji Tefsîru'l Qur'ani'l Azîm û Zadu'l Mesîr.) Wekî ku hate dîtin pûtên muşrîkan; gorên wan kesane ku bi salihbûna wan pêbawer in û gorên wan kirine gumbet û hin dar in ku bi çavkanîtîya şîfa û bereketa wan pêbawer in û tazîm dikin û peykerên di sûretê wan de çêkirî ne. Wekî din bnr. 71/Nûh, 23))

**21.** Erê ma (zarokên) kur ên we û (zarokên) keç ên wî ne?

**22.** Herwiha ev, parvekirineke bêînsaf û ne dadwer/adil e.

**23.** Ew (navên wekî Lat, Menat, Uzza) navên wisan in ku dê û bavên we danîne û Allah der heqê wan de qet tu delîl danexistîye . Ew bi tenê didin dûv zen û hewayên nefsên xwe. Sond be ji wan re, ji Rabbê wan hîdayet hatibû.

(Li ser mijara lêgerîna heqîqetê li derê wehîyê "tabîbûna zenê ye" bnr. 10/Yûnus, 36)

**24.** Ma (hûn wisan difikirin ku) her tiştê însan daxwaz dike qey wê (jê re) bê dayîn?

**25.** Ya pêşîn (dinya) jî û ya dawî (axîret) jî aîdê Allah e. (Ne ku her daxwaza însan, di herdu aleman de jî daxwaza Allah pêk tê.)

**26.** Li asîman gelek melaîket hene ku -ji xeynî wan ên ku Allah destûr daye pê ve- qet tu feyda şefaeta wan tune.

(Di Qur'anê de ji bo têgeha Şefaetê bnr. 43/Zuxruf, 86)

اِنَّ الَّذ۪ينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ لَيُسَمُّونَ الْمَلٰٓئِكَةَ تَسْمِيَةَ
الْاُنْثٰى ﴿٢٧﴾ وَمَا لَهُمْ بِه۪ مِنْ عِلْمٍۜ اِنْ يَتَّبِعُونَ اِلَّا الظَّنَّۚ وَاِنَّ الظَّنَّ
لَا يُغْن۪ي مِنَ الْحَقِّ شَيْـٔاًۚ ﴿٢٨﴾ فَاَعْرِضْ عَنْ مَنْ تَوَلّٰى عَنْ ذِكْرِنَا وَلَمْ يُرِدْ
اِلَّا الْحَيٰوةَ الدُّنْيَاۜ ﴿٢٩﴾ ذٰلِكَ مَبْلَغُهُمْ مِنَ الْعِلْمِۜ اِنَّ رَبَّكَ هُوَ اَعْلَمُ بِمَنْ
ضَلَّ عَنْ سَب۪يلِه۪ وَهُوَ اَعْلَمُ بِمَنِ اهْتَدٰى ﴿٣٠﴾ وَلِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ
وَمَا فِي الْاَرْضِۙ لِيَجْزِيَ الَّذ۪ينَ اَسَٓاؤُ۫ا بِمَا عَمِلُوا وَيَجْزِيَ الَّذ۪ينَ
اَحْسَنُوا بِالْحُسْنٰىۚ ﴿٣١﴾ اَلَّذ۪ينَ يَجْتَنِبُونَ كَبَٓائِرَ الْاِثْمِ وَالْفَوَاحِشَ
اِلَّا اللَّمَمَۜ اِنَّ رَبَّكَ وَاسِعُ الْمَغْفِرَةِۜ هُوَ اَعْلَمُ بِكُمْ اِذْ اَنْشَاَكُمْ
مِنَ الْاَرْضِ وَاِذْ اَنْتُمْ اَجِنَّةٌ ف۪ي بُطُونِ اُمَّهَاتِكُمْۚ فَلَا تُزَكُّٓوا
اَنْفُسَكُمْۜ هُوَ اَعْلَمُ بِمَنِ اتَّقٰىۘ ﴿٣٢﴾ اَفَرَاَيْتَ الَّذ۪ي تَوَلّٰىۙ ﴿٣٣﴾ وَاَعْطٰى
قَل۪يلاً وَاَكْدٰى ﴿٣٤﴾ اَعِنْدَهُ عِلْمُ الْغَيْبِ فَهُوَ يَرٰى ﴿٣٥﴾ اَمْ لَمْ يُنَبَّأْ
بِمَا ف۪ي صُحُفِ مُوسٰى ﴿٣٦﴾ وَاِبْرٰه۪يمَ الَّذ۪ي وَفّٰىۙ ﴿٣٧﴾ اَلَّا تَزِرُ وَازِرَةٌ وِزْرَ
اُخْرٰىۙ ﴿٣٨﴾ وَاَنْ لَيْسَ لِلْاِنْسَانِ اِلَّا مَا سَعٰىۙ ﴿٣٩﴾ وَاَنَّ سَعْيَهُ سَوْفَ
يُرٰىۖ ﴿٤٠﴾ ثُمَّ يُجْزٰيهُ الْجَزَٓاءَ الْاَوْفٰىۙ ﴿٤١﴾ وَاَنَّ اِلٰى رَبِّكَ الْمُنْتَهٰىۙ ﴿٤٢﴾
وَاَنَّهُ هُوَ اَضْحَكَ وَاَبْكٰىۙ ﴿٤٣﴾ وَاَنَّهُ هُوَ اَمَاتَ وَاَحْيَاۙ ﴿٤٤﴾

**27.** Bêguman ew ên îman bi axîretê naynin melaîketan bi navên mê dinavînin.

**28.** Di vê mijarê de qet tu zanîna wan tune. Bitenê didin pey zen ê. Bi rastî zen (wekî heq ne sipartîya agahîya qethî/wehîyê ye. Ji ber vê jî) nakeve şûna heqê/(diltêrîya/îtmînana) ku heq pêk tîne di zenê de tune.

(Li ser mijara lêgerîna heqîqetê li derê wehîyê “tabîbûna zenê ye” bnr. 10/Yûnus, 36)

**29.** Tu ji wî kesê rû vegerîne ku wî pişta xwe daye zikra/Kitêba me û ew bitenê jiyana dinyayê dixwaze.

**30.** Ev, asta/mertebeya ku di ilmê de gihîştinê ya dawî ye. Bêguman Rabbê te bi wan ên ku xerifîne jî û yên li ser hîdayetê ne jî herî çêtir dizane.

**31.** Tiştên li erd û esmanan bitevahî aîdê Allah in. (Aqûbet dê wisan çêbe: Ew) dê wan ên xerabî kirine di berdêla xerabîya wan de ceza bike; û yên qencî kirine jî di berdêla qencîyên wan de bi ya herî xweşik xelat bike.



**32.** Ew in ku; ji qisûr û gunehên biçûk pê ve xwe ji gunehên mezin (wekî araqvexwarî û zina û mêrkujî ku di îslâmê de cezayên wan hene) û ji fuhşîyatê diparêzin. Bêguman Rabbê te ew e ku mexfîreta wî fireh e. Dema ku hûn ji axê xuliqandin û hûn di zikê dêya xwe de cenîn bûn jî yê ku çêtir bi we dizane ew e. Nefsên xwe paqij/tezkîye nekin. Ew bi yên ditirsin û xwe diparêzin (bi yên xwedî teqwa) herî çêtir dizane.

**33.** Ma te ew ê rû vegerand, dît?

**34.** Û ew ê hindikî daye û paşê dev ji danê berdaye.

**35.** Nexwe ilmê xeybê li cem wî ye û ew (heqîqetan) dibîne?

**36.** Ma qey agahîya wan tiştên ku di Suhûfên Mûsa de nivîsandî bûn jê re nehat?

**37.** (Tiştên di suhûfên) Îbrahîmê ku hemû îş û karan bêkêmasî pêk anîye/yê wefadar de (nivîsandî bûn jî jê re nehat)?

**38.** Bêguman qet tu gunehkarek barê gunehkarekî din hilnagire.

**39.** Bêşik ji însan re, ji keda wî pê ve tiştekî din tune.

**40.** Û qet tu guman tune ku wê keda wî di pêş de bê dîtin.

**41.** Paşê wê di muqabilê keda wî de berdêlekî bêkêmasî bê dayîn.

**42.** Û bêguman çûyîna qazi (nuqteya dawî), wê bi bal Rabbê te ve be.

**43.** Bi rastî yê ku dikenîne jî û digirîne jî ew e.

**44.** Û bêguman yê dimirîne jî û divejîne jî ew e.

وَاَنَّهُ خَلَقَ الزَّوْجَيْنِ الذَّكَرَ وَالْاُنْثٰى ﴿٤٥﴾ مِنْ نُطْفَةٍ اِذَا تُمْنٰى ﴿٤٦﴾
وَاَنَّ عَلَيْهِ النَّشْاَةَ الْاُخْرٰى ﴿٤٧﴾ وَاَنَّهُ هُوَ اَغْنٰى وَاَقْنٰى ﴿٤٨﴾ وَاَنَّهُ هُوَ
رَبُّ الشِّعْرٰى ﴿٤٩﴾ وَاَنَّهُ اَهْلَكَ عَادًا الْاُولٰى ﴿٥٠﴾ وَثَمُودَا فَمَا اَبْقٰى ﴿٥١﴾
وَقَوْمَ نُوحٍ مِنْ قَبْلُ اِنَّهُمْ كَانُوا هُمْ اَظْلَمَ وَاَطْغٰى ﴿٥٢﴾ وَالْمُؤْتَفِكَةَ
اَهْوٰى ﴿٥٣﴾ فَغَشّٰيهَا مَا غَشّٰى ﴿٥٤﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكَ تَتَمَارٰى ﴿٥٥﴾
هٰذَا نَذِيرٌ مِنَ النُّذُرِ الْاُولٰى ﴿٥٦﴾ اَزِفَتِ الْاٰزِفَةُ ﴿٥٧﴾ لَيْسَ لَهَا مِنْ دُونِ
اللّٰهِ كَاشِفَةٌ ﴿٥٨﴾ اَفَمِنْ هٰذَا الْحَدِيثِ تَعْجَبُونَ ﴿٥٩﴾ وَتَضْحَكُونَ
وَلَا تَبْكُونَ ﴿٦٠﴾ وَاَنْتُمْ سَامِدُونَ ﴿٦١﴾ فَاسْجُدُوا لِلّٰهِ وَاعْبُدُوا ﴿٦٢﴾

سُورَةُ الْقَمَرِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسٌ وَخَمْسُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
اِقْتَرَبَتِ السَّاعَةُ وَانْشَقَّ الْقَمَرُ ﴿١﴾ وَاِنْ يَرَوْا اٰيَةً يُعْرِضُوا وَيَقُولُوا
سِحْرٌ مُسْتَمِرٌّ ﴿٢﴾ وَكَذَّبُوا وَاتَّبَعُوا اَهْوَٓاءَهُمْ وَكُلُّ اَمْرٍ مُسْتَقِرٌّ ﴿٣﴾
وَلَقَدْ جَٓاءَهُمْ مِنَ الْاَنْبَٓاءِ مَا فِيهِ مُزْدَجَرٌ ﴿٤﴾ حِكْمَةٌ بَالِغَةٌ فَمَا
تُغْنِ النُّذُرُ ﴿٥﴾ فَتَوَلَّ عَنْهُمْ يَوْمَ يَدْعُ الدَّاعِ اِلٰى شَيْءٍ نُكُرٍ ﴿٦﴾

**45.** Bêguman yê ku cotan wek nêr û mê xuliqandîye ew e.

**46.** Ji dilopek ava spermê (ya ku li rahîmê tê avêtin).

**47.** Qet guman tune ku vejandina ji nû ve jî aîdê wî ye.

**48.** Bêguman yê ku dewlemend dike jî ew e û qinyatê jî dide ew e. (An jî yê dewlemend jî û xîzan jî dike ew e.)

**49.** Bi rastî Rabbê (stêrka) Şî're (ku perestîya wê dikin) jî ew e.



**50.** Bêşik yê ku qewmê Ad ên berê de (hebûn) helak kir jî ew e.

**51.** Semûd jî... Tiştek ji wan (di paş de) nehişt.

**52.** Qewmê Nûh jî ku hê berê de (hebûn)... Lewre ew yên herî zilimkar û hartir bûn.

**53.** (Qewmê Lût) serûbinî hev bûyî (jî) rakir û li erdê xist.

**54.** Tişt (Feleqet) ên ew nixumandibû wan jî dorpêç kir/pêçand.

**55.** Ma tu yê di kîjan nîmetên Rabbê xwe de bikevî gumanê?

**56.** Ev (Qur'an), ji hişyarkerên berê hişyarkerek e.

**57.** Ew a nêzîk dibe (qiyamet) nêz bû.

**58.** Ji Allah pê ve kesekî ku wê eşkere bike tune.

**59.** Aniha hûn li vê peyvê (Qur'anê) şaş dimînin?!

**60.** Nexwe hûn (li hember agahîyên wî) dikenin û nagirîn?!

**61.** Û hûn di nava xefletê de kêf dikin û rû vedigerînin?!

**62.** Êdî ji Allah re secde bikin û (jê re) îbadet bikin.



## 54. SÛREYA QAMER

*(Sûreya Qamer, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pêncî û pênc (55) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya pêncî û çaremîn e. Ji ber ku di ayeta ewil de behsa şeqbûna hîvê (înşîqaqa qamer) dike bi navê sûreya Qamer hatîye navandin. Muşrîkên Mekkeyê ji bo îsbata nûubûweta wî ji Rasûlullah (ass) delîlekî daxwaz kirin. Li ser vê bûyerê Allah (ac) mûcîzeya şeqû'lqamer nîşanî Rasûlullah (ass) da. Hîv bû dû şeq. Sûreya Qamer, li ser mijara serdestîya Qur'anê ya wêjeyî/edebî jî mînakekî bijare ye.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Qiyamet nêz bû û hîv şeq bû.

**2.** Eger ew ayetek/mucîzeyek bibînin rû vedigerînin û wiha dibêjin: "Ev, sêhreke ku rêya xwe didomîne/mehkûmê tunebûnê ye".

**3.** Derewandin û dane pey hewayên/hewesên xwe. Her îş/kar, (bi kiryarê xwe) cihê xwe digire. (Karên xêrê bi ehlê xêrê re û karên xerab jî bi ehlê xerabîyê re qayîm e.)

**4.** Sond be ji wan re, agahîyên (qewmên berê ku wan ji derewandin û tabîbûna hewesên wan) bigire hat.

**5.** (Ew agahî,) di asteke ku şêwaza wê pir bandorker û bi hikmet e. Lê belê hişyarî (ji ew ên qîma xwe naynin re) feyde nade.

**6.** Herwiha, tu ji wan rû vegerîne. Ew roja ku wê bangvan gazî tiştekî erjeng/nenas bike,

خُشَّعًا اَبْصَارُهُمْ يَخْرُجُونَ مِنَ الْاَجْدَاثِ كَاَنَّهُمْ جَرَادٌ مُنْتَشِرٌ ﴿٧﴾
مُهْطِعِينَ اِلَى الدَّاعِ يَقُولُ الْكَافِرُونَ هٰذَا يَوْمٌ عَسِرٌ ﴿٨﴾ كَذَّبَتْ
قَبْلَهُمْ قَوْمُ نُوحٍ فَكَذَّبُوا عَبْدَنَا وَقَالُوا مَجْنُونٌ وَازْدُجِرَ ﴿٩﴾
فَدَعَا رَبَّهُ اَنِّي مَغْلُوبٌ فَانْتَصِرْ ﴿١٠﴾ فَفَتَحْنَا اَبْوَابَ السَّمَاءِ بِمَاءٍ
مُنْهَمِرٍ ﴿١١﴾ وَفَجَّرْنَا الْاَرْضَ عُيُونًا فَالْتَقَى الْمَاءُ عَلَى اَمْرٍ قَدْ قُدِرَ ﴿١٢﴾
وَحَمَلْنَاهُ عَلَى ذَاتِ اَلْوَاحٍ وَدُسُرٍ ﴿١٣﴾ تَجْرِي بِاَعْيُنِنَا جَزَاءً لِمَنْ
كَانَ كُفِرَ ﴿١٤﴾ وَلَقَدْ تَرَكْنَاهَا اٰيَةً فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿١٥﴾ فَكَيْفَ
كَانَ عَذَابِي وَنُذُرِ ﴿١٦﴾ وَلَقَدْ يَسَّرْنَا الْقُرْاٰنَ لِلذِّكْرِ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿١٧﴾
كَذَّبَتْ عَادٌ فَكَيْفَ كَانَ عَذَابِي وَنُذُرِ ﴿١٨﴾ اِنَّا اَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ رِيحًا
صَرْصَرًا فِي يَوْمِ نَحْسٍ مُسْتَمِرٍّ ﴿١٩﴾ تَنْزِعُ النَّاسَ كَاَنَّهُمْ اَعْجَازُ
نَخْلٍ مُنْقَعِرٍ ﴿٢٠﴾ فَكَيْفَ كَانَ عَذَابِي وَنُذُرِ ﴿٢١﴾ وَلَقَدْ يَسَّرْنَا الْقُرْاٰنَ
لِلذِّكْرِ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿٢٢﴾ كَذَّبَتْ ثَمُودُ بِالنُّذُرِ ﴿٢٣﴾ فَقَالُوا اَبَشَرًا
مِنَّا وَاحِدًا نَتَّبِعُهُ اِنَّا اِذًا لَفِي ضَلَالٍ وَسُعُرٍ ﴿٢٤﴾ ءَاُلْقِيَ الذِّكْرُ عَلَيْهِ
مِنْ بَيْنِنَا بَلْ هُوَ كَذَّابٌ اَشِرٌ ﴿٢٥﴾ سَيَعْلَمُونَ غَدًا مَنِ الْكَذَّابُ
الْاَشِرُ ﴿٢٦﴾ اِنَّا مُرْسِلُوا النَّاقَةِ فِتْنَةً لَهُمْ فَارْتَقِبْهُمْ وَاصْطَبِرْ ﴿٢٧﴾

**7.** Ji gorên xwe wekî kulîyên belavbûyî û di rewşa çavtirsandî/çavşikestî de derdikevin.

**8.** Ew ên kafir bi bal bangvan ve bi lez dibezin û wiha dibêjin: “Ev, rojeke dijwar e.”

**9.** Berîya wan qewmê Nûh jî derewandibû. Evdê me derewandibûn û gotibûn: “Ew, dîn e.” (Nûh, ji vegotina tewhîdê) hatibû girtin, astengkirin.

**10.** (Nûh) ji Rabbê xwe re dûa kir: “Bêguman ez, têkçûm, (alîkarîya min bike û ji wan) heyfa min hilîne.”

**11.** Me jî derîyên esman bi aveke “bênavber û wek tavî dibare” vekir.

**12.** Me ji erdê jî çavkanîyan pejiqand. (Ava erd û esman) li ser karekî teqdîrkirî gihîştin hev.

**13.** Me (Nûh jî) li ser (keştîyeke) ji depan/texteyan û mixan/bizmaran (çêkirî) kişand.

**14.** Li ber çavên me diherikî û diçû. (Ev, ji Nûh) a ku nankorî (li wî) hatibû kirin re xelatek bû.

**15.** Sond be me, ew wek ayetek (hewceye ku îbret jê bê girtin) danî. Kesê ku îbret bigire heye gelo?

**16.** Ka çawaye ezabê min û hişyarîya min?

**17.** Sond be, ji bo ku şîret jê bê girtin me Qur'an hêsan kir. Belê, yê ku şîret bigire heye?”

**18.** (Qewmê) Ad jî derewand. Ka çawaye ezabê min û hişyarîya min?

**19.** Bêguman me, di wê roja ku felaketa wê daîmî ye bi ser wan ve bahozekî bi şîdet şand.

**20.** Mirovan her wekî ku ew qurmê dara xurmê ne ew ji rehên/kokên xwe hildikir û diavêt.

**21.** Ka çawaye ezabê min û hişyarîya min?

**22.** Sond be, ji bo ku şîret jê bê girtin me Qur'an hêsan kir. Belê, yê ku şîret bigire heye?

**23.** (Qewmê) Semud jî hişyarîyan derewandin.

**24.** Gotin: “Ma em ê bidin pey mirovekî ji nav xwe (û yekî wekî me)?! Di wê rewşê de em ê bibin ji wan ên di nava xerifîtî û harîtîyê de.”

**25.** “Ma ji nav me zikir/wehîy ji wî re hatîye dayîn? Berevajî ew, derewkarekî rûdayî û qure ye.”

**26.** Ew ê sibê hîn bibin ka kî ye ew derewkarê rûdayî û qure?

**27.** Qet guman tune ku ji bo ceribandina wan, em ê ji wan re deveyê mê bişînin. Êdî tu bi çavnêrîya wan re sebir bike.

وَنَبِّئْهُمْ اَنَّ الْمَٓاءَ قِسْمَةٌ بَيْنَهُمْۚ كُلُّ شِرْبٍ مُحْتَضَرٌ ﴿٢٨﴾ فَنَادَوْا
صَاحِبَهُمْ فَتَعَاطٰى فَعَقَرَ ﴿٢٩﴾ فَكَيْفَ كَانَ عَذَابٖي وَنُذُرِ ﴿٣٠﴾
اِنَّٓا اَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ صَيْحَةً وَاحِدَةً فَكَانُوا كَهَشٖيمِ الْمُحْتَظِرِ ﴿٣١﴾ وَلَقَدْ
يَسَّرْنَا الْقُرْاٰنَ لِلذِّكْرِ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿٣٢﴾ كَذَّبَتْ قَوْمُ لُوطٍ بِالنُّذُرِ ﴿٣٣﴾
اِنَّٓا اَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ حَاصِبًا اِلَّٓا اٰلَ لُوطٍۜ نَجَّيْنَاهُمْ بِسَحَرٍ ﴿٣٤﴾ نِعْمَةً
مِنْ عِنْدِنَاۜ كَذٰلِكَ نَجْزٖي مَنْ شَكَرَ ﴿٣٥﴾ وَلَقَدْ اَنْذَرَهُمْ بَطْشَتَنَا
فَتَمَارَوْا بِالنُّذُرِ ﴿٣٦﴾ وَلَقَدْ رَاوَدُوهُ عَنْ ضَيْفِهٖ فَطَمَسْنَٓا اَعْيُنَهُمْ فَذُوقُوا
عَذَابٖي وَنُذُرِ ﴿٣٧﴾ وَلَقَدْ صَبَّحَهُمْ بُكْرَةً عَذَابٌ مُسْتَقِرٌّۚ ﴿٣٨﴾ فَذُوقُوا
عَذَابٖي وَنُذُرِ ﴿٣٩﴾ وَلَقَدْ يَسَّرْنَا الْقُرْاٰنَ لِلذِّكْرِ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿٤٠﴾
وَلَقَدْ جَٓاءَ اٰلَ فِرْعَوْنَ النُّذُرُۚ ﴿٤١﴾ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا كُلِّهَا فَاَخَذْنَاهُمْ
اَخْذَ عَزٖيزٍ مُقْتَدِرٍ ﴿٤٢﴾ اَكُفَّارُكُمْ خَيْرٌ مِنْ اُو۬لٰٓئِكُمْ اَمْ لَكُمْ بَرَٓاءَةٌ
فِي الزُّبُرِۚ ﴿٤٣﴾ اَمْ يَقُولُونَ نَحْنُ جَمٖيعٌ مُنْتَصِرٌ ﴿٤٤﴾ سَيُهْزَمُ الْجَمْعُ
وَيُوَلُّونَ الدُّبُرَ ﴿٤٥﴾ بَلِ السَّاعَةُ مَوْعِدُهُمْ وَالسَّاعَةُ اَدْهٰى وَاَمَرُّ ﴿٤٦﴾
اِنَّ الْمُجْرِمٖينَ فٖي ضَلَالٍ وَسُعُرٍ ﴿٤٧﴾ يَوْمَ يُسْحَبُونَ فِي النَّارِ
عَلٰى وُجُوهِهِمْۜ ذُوقُوا مَسَّ سَقَرَ ﴿٤٨﴾ اِنَّا كُلَّ شَيْءٍ خَلَقْنَاهُ بِقَدَرٍ ﴿٤٩﴾

**28.** Agahîyê bide wan! Av, di navbera wan de hatîye parvekirin/parvekirî ye. Dora vexwarina avê ya kî be, bila li wir amade bibe.

**29.** Gazî hevalên xwe kirin. Wî jî rahişt (kêr) ê û (deve) serjêkir.

**30.** Ka çawaye ezabê min û hişyarîya min?

**31.** Qet tu guman tune, me bi ser wan de qîrînek şand. Ew, di cih de bûn wekî pûş û pelaxên hûrbûyî û bi derdor ve reşandî.

**32.** Sond be, ji bo ku şîret jê bê girtin me Qur'an hêsan kir. Belê, yê ku şîret bigire heye?

**33.** Qewmê Lût jî hişyarkeran derewand.

**34.** Qet tu guman tune, me bagerekî kevir dibarîne bi ser wan de şand. Dema berbangê me bi-tenê malbata Lût xelas kir.

**35.** Ji cem me wek nîmetek... Em kesê şikurdar jî bi heman awayî xelat dikin.

**36.** Sond be ku (Lût), bi zeftkirina me ya (bi şîdet) wan hişyar kiribû. Lê ew li ser van hişyarîyan di gumanê de bûn.

**37.** Sond be wan mêvanên wî jî miraz dikirin. Me jî çavên wan jêbir (û kor kir). (Me got:) "De ezab û hişyarîya min bitamînin!"

**38.** Sond be ku di danê sibehê de ezabekî vebirî/qethî bi ser wan de girt.

**39.** De wê hişyarî û ezaba min bitamînin (em bibînin)!

**40.** Sond be, ji bo ku şîret jê bê girtin me Qur'an hêsan kir. Belê, kesekî ku şîret bigire heye?

**41.** Sond be, ji malbata Fîrewn re jî hişyarker hatin.

**42.** Ayetên me bitevahî derewandin. Me jî ew, bi zeftkirina wî (Allahê) ya ku xwedî îzzet û qudret e, zeft kir.

**43.** Ma qey kafirên we ji wan bixêrtir in? Nexwe ji bo we di Kitêbê de (li ser rizgarîya we ya ji ezabê) wesîqe (ya beraetê) heye?

**44.** Nexwe ew wiha dibêjin: "Em ê (li dij ezaba Allah) alîkarîya hev bikin û bi ser bikevin?"

**45.** Ew kom, (di demeke nêz de) wê têkbiçe/bifeşile û paşde bireve.

**46.** (Nexêr, ne wisan e!) Ew a ku ji wan re hatîye weadkirin (ezaba heqîqî) qiyamet e. Û qiyamet, herî erjengtir û herî bi jantir e.

**47.** Bêguman ew ên mucrîm/sûcdar, di nava xerifîtî û harîtîyê de ne."

**48.** Ew roja ku li ser rûyê xwe di nava agir de tên kaşkirin û dê ji wan re wiha bê gotin: "Pêhesana/temasa cehennemê tam bikin!"

**49.** Qet tu guman tune, me her tiştî bi qaderekî xuliqand.

وَمَٓا اَمْرُنَٓا اِلَّا وَاحِدَةٌ كَلَمْحٍ بِالْبَصَرِ ﴿٥٠﴾ وَلَقَدْ اَهْلَكْنَٓا
اَشْيَاعَكُمْ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿٥١﴾ وَكُلُّ شَيْءٍ فَعَلُوهُ
فِي الزُّبُرِ ﴿٥٢﴾ وَكُلُّ صَغِيرٍ وَكَبِيرٍ مُسْتَطَرٌ ﴿٥٣﴾ اِنَّ الْمُتَّقِينَ
فِي جَنَّاتٍ وَنَهَرٍ ﴿٥٤﴾ فِي مَقْعَدِ صِدْقٍ عِنْدَ مَلِيكٍ مُقْتَدِرٍ ﴿٥٥﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
اَلرَّحْمٰنُ ﴿١﴾ عَلَّمَ الْقُرْاٰنَ ﴿٢﴾ خَلَقَ الْاِنْسَانَ ﴿٣﴾ عَلَّمَهُ الْبَيَانَ ﴿٤﴾
اَلشَّمْسُ وَالْقَمَرُ بِحُسْبَانٍ ﴿٥﴾ وَالنَّجْمُ وَالشَّجَرُ يَسْجُدَانِ ﴿٦﴾
وَالسَّمَٓاءَ رَفَعَهَا وَوَضَعَ الْمِيزَانَ ﴿٧﴾ اَلَّا تَطْغَوْا فِي الْمِيزَانِ ﴿٨﴾
وَاَقِيمُوا الْوَزْنَ بِالْقِسْطِ وَلَا تُخْسِرُوا الْمِيزَانَ ﴿٩﴾ وَالْاَرْضَ وَضَعَهَا
لِلْاَنَامِ ﴿١٠﴾ فِيهَا فَاكِهَةٌ وَالنَّخْلُ ذَاتُ الْاَكْمَامِ ﴿١١﴾ وَالْحَبُّ ذُو
الْعَصْفِ وَالرَّيْحَانُ ﴿١٢﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿١٣﴾
خَلَقَ الْاِنْسَانَ مِنْ صَلْصَالٍ كَالْفَخَّارِ ﴿١٤﴾ وَخَلَقَ الْجَٓانَّ
مِنْ مَارِجٍ مِنْ نَارٍ ﴿١٥﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿١٦﴾

**50.** (Ji bo bûyîna karekî) emrê me, carek wekî girtin û vekirina çav e.
**51.** Sond be ku me yên wekî we berê de jî helak kirin. Belê, yê ku şîret bigire heye?
**52.** Hemû amelên wan di Kitêban de (qeydkirî ne).
**53.** Hemû tiştên biçûk û mezin (rêzerêz) hatîye nivîsandin.
**54.** Bêguman ew mutteqî, di nava cennetan û çeman de ne.
**55.** Li cem Melîkekî xwedî qudret/îqtîdar di meqama sidqê/rastîyê de ne.



## 55. SÛREYA RAHMÂN

*(Sûreya Rahmân, Medenî ye (li Medineyê nazil bûye) û heftê û heşt (78) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya pêncî û pêncemîn e. "Rahmân", ji Esmaû'l Hûsna ye. Ayeta yekemîn ji vê navê pêkhatî ye. Sûre bi vê navê dest pê dike û bi navê sûreya Rahmân hatîye navandin. Ayetên vê sûreyê ji hevokên kurt muteşekkîl in. Xîtabê li cin û însanan dike. Dibe ku ji ber vê yekê be jî di vê sûreyê de uslûba vegotina dulibî/tesnîye hâkim e. Sûreya Rahmân jî ji hêla rûmeta edebî ya asta bilind ve di Qur'anê de wek mînakekî bijare ye.*



*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Er-Rahmân,
**2.** Qur'anê hîn kir.
**3.** Însan xuliqand.
**4.** Beyanê (axaftin û îfadekirina xwe bixwe) hînî wî kir.
**5.** Roj û hîv li gorî hisabekî (diyarkirî tevdigerin).
**6.** Stêrk û dar ji wî (Allah) re secde dikin.
**7.** Me esman bilind kir û mîzan (edaletê di nav însanan de wek pîvan) danî.
**8.** Di mîzanê de (di pîvana edaletê de) neheqî nekin.
**9.** Kêşanê li ser edaletê bikin û mêzênê/terazîyê kêm nekişînin.
**10.** Ser rûyê erdê ji bo candarên (li wê derê dijîn) danî/nizm kir. (Ji bo jiyanê musexer/bikêrhatî kir.)
**11.** Li wê derê fêkî û darên xurmeyên bi gûşî/bi kulîlk hene.
**12.** Libên bi qaşil û gîyayên bêhnxweş hene.
**13.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**14.** Wî, însan ji hişkeherîyeke reşeguherî wekî ku pehtî be xuliqand.
**15.** Cinan jî ji agirê bê dû xuliqand.
**16.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

رَبُّ الْمَشْرِقَيْنِ وَرَبُّ الْمَغْرِبَيْنِۚ ﴿١٧﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿١٨﴾
مَرَجَ الْبَحْرَيْنِ يَلْتَقِيَانِۙ ﴿١٩﴾ بَيْنَهُمَا بَرْزَخٌ لَا يَبْغِيَانِۚ ﴿٢٠﴾ فَبِاَيِّ
اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٢١﴾ يَخْرُجُ مِنْهُمَا اللُّؤْلُؤُ وَالْمَرْجَانُۚ ﴿٢٢﴾
فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٢٣﴾ وَلَهُ الْجَوَارِ الْمُنْشَاٰتُ فِي الْبَحْرِ
كَالْاَعْلَامِۚ ﴿٢٤﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۚ ﴿٢٥﴾ كُلُّ مَنْ عَلَيْهَا فَانٍۚ ﴿٢٦﴾
وَيَبْقٰى وَجْهُ رَبِّكَ ذُو الْجَلَالِ وَالْاِكْرَامِۚ ﴿٢٧﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا
تُكَذِّبَانِ ﴿٢٨﴾ يَسْـَٔلُهُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ كُلَّ يَوْمٍ هُوَ فِي شَاْنٍۚ ﴿٢٩﴾
فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٣٠﴾ سَنَفْرُغُ لَكُمْ اَيُّهَ الثَّقَلَانِۚ ﴿٣١﴾
فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٣٢﴾ يَا مَعْشَرَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِ
اِنِ اسْتَطَعْتُمْ اَنْ تَنْفُذُوا مِنْ اَقْطَارِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ فَانْفُذُواۜ
لَا تَنْفُذُونَ اِلَّا بِسُلْطَانٍۚ ﴿٣٣﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٣٤﴾
يُرْسَلُ عَلَيْكُمَا شُوَاظٌ مِنْ نَارٍ وَنُحَاسٌ فَلَا تَنْتَصِرَانِۚ ﴿٣٥﴾ فَبِاَيِّ
اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٣٦﴾ فَاِذَا انْشَقَّتِ السَّمَٓاءُ فَكَانَتْ وَرْدَةً
كَالدِّهَانِۚ ﴿٣٧﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٣٨﴾ فَيَوْمَئِذٍ لَا يُسْـَٔلُ
عَنْ ذَنْبِه۪ٓ اِنْسٌ وَلَا جَٓانٌّۚ ﴿٣٩﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٤٠﴾

**17.** (Ew,) Rabbê herdu rojhilatan û herdu rojavayan e.
**18.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**19.** Ji bo ku bigihîjin hevdu (yek şîrîn û ya din şor) herdu behr hatin berdan.
**20.** Di navbera wan de astengek heye. Ji tixubên hevdu naborin (têkilî hev nabin.)
**21.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**22.** Ji herduyan jî dur û mercan derdikeve.
**23.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**24.** Ew keştîyên li ser behrê ku wekî çiyan diherikin û diçin jî yên wî ne.
**25.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**26.** Her kesên li ser wê hene hemû bihorbar in/fanî ne.
**27.** Lê Rabbê te yê xwedî celâl û îkram wê baqî bimîne.
**28.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**29.** Li erd û esman her çi kes hene (hewcetîyên xwe) jê dixwazin. Ew her roj di karekî de ye.
**30.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**31.** Gelî Seqelan (ên ji însanan û ji cinan pêkhatî ne)! Em ê (di demeke nêz de) hisabê we bibînin.
**32.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**33.** Gelî civaka însan û cinan! Eger,ji derketina sînorên erd û esmanan re quweta we bigihîjê, derkevin. Lê belê hêz û otorîteyeke we ya (herî mezin) nebe hûn nikarin vê bikin.
**34.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**35.** Bi ser we herduyan de jî alavê agir û dû tê şandin. Hûn nikarin (jê re) bibin asteng jî.
**36.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**37.** Dema asîman diqelişe û bibe wekî sorguleke mîsala rûnê helîyayî.
**38.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?
**39.** Ew roj ne însan û ne jî cin ji gunehê xwe tê pirsîn.
**40.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

يُعْرَفُ الْمُجْرِمُونَ بِسِيمٰيهُمْ فَيُؤْخَذُ بِالنَّوَاصِى وَالْاَقْدَامِۚ ﴿٤١﴾
فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٤٢﴾ هٰذِهِ جَهَنَّمُ الَّتِى يُكَذِّبُ بِهَا
الْمُجْرِمُونَۢ ﴿٤٣﴾ يَطُوفُونَ بَيْنَهَا وَبَيْنَ حَمِيمٍ اٰنٍۚ ﴿٤٤﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ
رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۚ ﴿٤٥﴾ وَلِمَنْ خَافَ مَقَامَ رَبِّهِ جَنَّتَانِۚ ﴿٤٦﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ
رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۙ ﴿٤٧﴾ ذَوَاتَٓا اَفْنَانٍۚ ﴿٤٨﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٤٩﴾
فِيهِمَا عَيْنَانِ تَجْرِيَانِۚ ﴿٥٠﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٥١﴾
فِيهِمَا مِنْ كُلِّ فَاكِهَةٍ زَوْجَانِۚ ﴿٥٢﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٥٣﴾
مُتَّكِـِٔينَ عَلٰى فُرُشٍ بَطَٓائِنُهَا مِنْ اِسْتَبْرَقٍۜ وَجَنَا الْجَنَّتَيْنِ دَانٍۚ ﴿٥٤﴾
فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٥٥﴾ فِيهِنَّ قَاصِرَاتُ الطَّرْفِۙ
لَمْ يَطْمِثْهُنَّ اِنْسٌ قَبْلَهُمْ وَلَا جَٓانٌّۚ ﴿٥٦﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۚ ﴿٥٧﴾
كَاَنَّهُنَّ الْيَاقُوتُ وَالْمَرْجَانُۚ ﴿٥٨﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا
تُكَذِّبَانِ ﴿٥٩﴾ هَلْ جَزَٓاءُ الْاِحْسَانِ اِلَّا الْاِحْسَانُۚ ﴿٦٠﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ
رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٦١﴾ وَمِنْ دُونِهِمَا جَنَّتَانِۚ ﴿٦٢﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا
تُكَذِّبَانِۙ ﴿٦٣﴾ مُدْهَٓامَّتَانِۚ ﴿٦٤﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۚ ﴿٦٥﴾
فِيهِمَا عَيْنَانِ نَضَّاخَتَانِۚ ﴿٦٦﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۚ ﴿٦٧﴾

**41.** (Ne hewceyê pirsê ye, lewre) ew ên mucrîm/sûcdar ji rûyên xwe tên naskirin û ji perçem/ji bisk û lingên xwe tên girtin.

**42.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**43.** Ha ev, ew cehennem e ku mucrîman ew diderewand.

**44.** (Ew) di navbera vê û ava kelandî de diçin û tên.

**45.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**46.** Ji bo kesê ku (ji bo hisabê) ji rawestana hizûra Rabbê xwe ditirse re, du cennet hene.

**47.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**48.** Çiqlên darên herdu cennetan jî bi sih û zêde bi fêkî ne.

**49.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**50.** Di herduyan de jî du kanîyên diherikin hene.

**51.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**52.** Li wir ji her çeşîdên fêkî cotecot hene.

**53.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**54.** Li ser binraxên/doşekên ku betanê wan ji hevrîşimê stûr paldayî ne. (Bi dest xistin û civandina) fêkîyên herdu cennetan jî nêzîk/hêsan e.

**55.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**56.** (Di herdu cennetan de jî) jinên wisan hene ku çavên wan her li mêrên wan in. (Berîya mêrê wan) ne ji însan û ne jî ji cinan destê tu kesî li wan ketîye.

**57.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**58.** Ew, her wekî yaqût û mercan in.

**59.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**60.** Ma qey berdêla qencîyê ji qencîyê pê ve tiştekî din e? (Ew ê li dinyayê qencî bike wê li axîretê qencî bibîne.)

**61.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**62.** Ji xeynî wan herduyan du cennetên din hene.

**63.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**64.** Kesketarî ne/Kipîkesk in.

**65.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**66.** Di herduyan de jî du kanî hene ku bênavber dipijiqin hene.

**67.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin.

**68.** Di herduyan de jî fêkî û xurme û hinar hene.

**69.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**70.** Li wê derê jinên bixêr (salîha û) xweşik hene.

**71.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**72.** Di nav konan de horî (yên ku bi-tenê mêrên wan ew dibînin) hene.

**73.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**74.** (Berîya mêrê wan) ne ji însanan û ne jî ji cinan destê tu kesî li wan ketîye.

**75.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**76.** Li balgihên kesk û binraxên/doşekên di xweşikahîyê de (dilkêş in) paldayî ne.

**77.** (Di vê rewşê de) ma hûn ê kîjan nîmetên Rabbê xwe biderewînin?

**78.** Navê Rabbê te yê xwedî celâl û îkram çi qas berz/bilind e.



## 56. SÛREYA WAQÎE

*(Sûreya Waqîe, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û not û şeş (96) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya pêncî û şeşemîn e. Sûre bi peyva "Waqîe" dest pê dike. Ev peyv tê ser maneya qiyamet û bi navê sûreya Waqîe hatîye navandin. Behsa rewşa însanan tê kirin ku ew roj wek ehlê rastê û ehlê çepê û sabîqûn/ew ên li pêş in, dibin sê kom. Bûyerên roja qiyametê û rewşa ehlê cennetê û nîmetên cennetê ku ew nîmet teqez naqedin û rewşa ehlê cehenneme tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Dema ku waqîe (qiyamet) rabe,

**2.** Kesekî ku pêkanîna wê biderewîne tune.

**3.** Ew, (rojeke wisan e ku; hin kesan) dadixîne û (hin kesan jî) bilind dike.

**4.** Dema ku erd bi şîdet diheje.

**5.** Û dema ku çiya jî hûr û hêra dibin.

**6.** Dema ew dibin xwelîya berbayê.

فِيهِمَا فَاكِهَةٌ وَنَخْلٌ وَرُمَّانٌ ﴿٦٨﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٦٩﴾
فِيهِنَّ خَيْرَاتٌ حِسَانٌ ﴿٧٠﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٧١﴾ حُورٌ
مَقْصُورَاتٌ فِي الْخِيَامِ ﴿٧٢﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٧٣﴾
لَمْ يَطْمِثْهُنَّ اِنْسٌ قَبْلَهُمْ وَلَا جَٓانٌّ ﴿٧٤﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٧٥﴾
مُتَّكِـِٔينَ عَلٰى رَفْرَفٍ خُضْرٍ وَعَبْقَرِيٍّ حِسَانٍ ﴿٧٦﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ
رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٧٧﴾ تَبَارَكَ اسْمُ رَبِّكَ ذِي الْجَلَالِ وَالْاِكْرَامِ ﴿٧٨﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

اِذَا وَقَعَتِ الْوَاقِعَةُ ﴿١﴾ لَيْسَ لِوَقْعَتِهَا كَاذِبَةٌ ﴿٢﴾ خَافِضَةٌ رَافِعَةٌ ﴿٣﴾ اِذَا
رُجَّتِ الْاَرْضُ رَجًّا ﴿٤﴾ وَبُسَّتِ الْجِبَالُ بَسًّا ﴿٥﴾ فَكَانَتْ هَبَٓاءً مُنْبَثًّا ﴿٦﴾
وَكُنْتُمْ اَزْوَاجًا ثَلٰثَةً ﴿٧﴾ فَاَصْحَابُ الْمَيْمَنَةِ مَٓا اَصْحَابُ الْمَيْمَنَةِ ﴿٨﴾
وَاَصْحَابُ الْمَشْـَٔمَةِ مَٓا اَصْحَابُ الْمَشْـَٔمَةِ ﴿٩﴾ وَالسَّابِقُونَ السَّابِقُونَ ﴿١٠﴾
اُو۬لٰٓئِكَ الْمُقَرَّبُونَ ﴿١١﴾ فِي جَنَّاتِ النَّعِيمِ ﴿١٢﴾ ثُلَّةٌ مِنَ الْاَوَّلِينَ ﴿١٣﴾ وَقَلِيلٌ
مِنَ الْاٰخِرِينَ ﴿١٤﴾ عَلٰى سُرُرٍ مَوْضُونَةٍ ﴿١٥﴾ مُتَّكِـِٔينَ عَلَيْهَا مُتَقَابِلِينَ ﴿١٦﴾

**7.** Û dema hûn jî dibin sê beş/kom,

**8.** Ew Eshabu'l Meymene (yên ku defterên wan ên amelê ji milê rastê ve tên dayîn) çi Eshabu'l Meymene ne!

**9.** Ew Eshabu'l Meş'eme (yên ku defterên wan ên amelê ji milê çepê ve tên dayîn) çi Eshabu'l Meş'eme ne!

**10.** Ew ên (di îman û amelên salih de) di pêş de ne, (ewana) pêşeng in.

**11.** Evana nêzkirîyê (Allah) in.

**12.** Di cennetên Naîm de.

**13.** Pirên wan ji pêşîyan in. (Ji ummetên borî ne.)

**14.** Hinekên wan jî ji paşîyan in.

**15.** Li ser textên (bi zêr û zîvan) neqişkirî runiştî ne.

**16.** Li ser wan textan li pêşberî hev paldayî ne.

يَطُوفُ عَلَيْهِمْ وِلْدَانٌ مُخَلَّدُونَ ﴿١٧﴾ بِاَكْوَابٍ وَاَبَارِيقَ وَكَاْسٍ
مِنْ مَعِينٍ ﴿١٨﴾ لَا يُصَدَّعُونَ عَنْهَا وَلَا يُنْزِفُونَ ﴿١٩﴾ وَفَاكِهَةٍ مِمَّا يَتَخَيَّرُونَ ﴿٢٠﴾
وَلَحْمِ طَيْرٍ مِمَّا يَشْتَهُونَ ﴿٢١﴾ وَحُورٌ عِينٌ ﴿٢٢﴾ كَاَمْثَالِ اللُّؤْلُؤِ
الْمَكْنُونِ ﴿٢٣﴾ جَزَاءً بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٢٤﴾ لَا يَسْمَعُونَ فِيهَا
لَغْوًا وَلَا تَاْثِيمًا ﴿٢٥﴾ اِلَّا قِيلًا سَلَامًا سَلَامًا ﴿٢٦﴾ وَاَصْحَابُ الْيَمِينِ
مَا اَصْحَابُ الْيَمِينِ ﴿٢٧﴾ فِي سِدْرٍ مَخْضُودٍ ﴿٢٨﴾ وَطَلْحٍ مَنْضُودٍ ﴿٢٩﴾
وَظِلٍّ مَمْدُودٍ ﴿٣٠﴾ وَمَاءٍ مَسْكُوبٍ ﴿٣١﴾ وَفَاكِهَةٍ كَثِيرَةٍ ﴿٣٢﴾
لَا مَقْطُوعَةٍ وَلَا مَمْنُوعَةٍ ﴿٣٣﴾ وَفُرُشٍ مَرْفُوعَةٍ ﴿٣٤﴾ اِنَّا اَنْشَاْنَاهُنَّ
اِنْشَاءً ﴿٣٥﴾ فَجَعَلْنَاهُنَّ اَبْكَارًا ﴿٣٦﴾ عُرُبًا اَتْرَابًا ﴿٣٧﴾ لِاَصْحَابِ الْيَمِينِ ﴿٣٨﴾
ثُلَّةٌ مِنَ الْاَوَّلِينَ ﴿٣٩﴾ وَثُلَّةٌ مِنَ الْاٰخِرِينَ ﴿٤٠﴾ وَاَصْحَابُ الشِّمَالِ
مَا اَصْحَابُ الشِّمَالِ ﴿٤١﴾ فِي سَمُومٍ وَحَمِيمٍ ﴿٤٢﴾ وَظِلٍّ مِنْ يَحْمُومٍ ﴿٤٣﴾
لَا بَارِدٍ وَلَا كَرِيمٍ ﴿٤٤﴾ اِنَّهُمْ كَانُوا قَبْلَ ذٰلِكَ مُتْرَفِينَ ﴿٤٥﴾ وَكَانُوا
يُصِرُّونَ عَلَى الْحِنْثِ الْعَظِيمِ ﴿٤٦﴾ وَكَانُوا يَقُولُونَ اَئِذَا مِتْنَا
وَكُنَّا تُرَابًا وَعِظَامًا ءَاِنَّا لَمَبْعُوثُونَ ﴿٤٧﴾ اَوَاٰبَاؤُنَا الْاَوَّلُونَ ﴿٤٨﴾ قُلْ
اِنَّ الْاَوَّلِينَ وَالْاٰخِرِينَ ﴿٤٩﴾ لَمَجْمُوعُونَ اِلٰى مِيقَاتِ يَوْمٍ مَعْلُومٍ ﴿٥٠﴾

**17.** Li derdora wan (ji bo xizmetê) xortên nemir/ebedî digerin.
**18.** Bi qedeh û cer û kaseyên ku ji çavkanîya xwe hatine tijekirin.
**19.** (Ji ber wê vexwarinê) ne serê wan diêşe û ne jî (bi serxweş bûnê) aqlê wan diçe.
**20.** Fêkîyên ku hildibijêrin.
**21.** Goştê teyrên ku dilê wan dibijîyê.
**22.** Horîyên çavgir (çavxezal).
**23.** (Ewana) wekî durên veşartî ne.
**24.** Wek berdêla (amelên wan) ên salih.
**25.** Ew li wê derê peyveke pûç/bê feyde û gotineke gunehkarî nabihîzin.
**26.** Peyva ku wê (berhemberê hevdu) bibihîzin bitenê “Silav, Silav” e.
**27.** Ew Eshabu’l Yemîn (yên ku defterên xwe yê amelê ji milê rastê ve wê bistînin) çi Eshabu’l Yemîn e!
**28.** Darên gelyazê yên têr fêkî û bêsitrî ne.
**29.** Darên mûzê yên ku gûşî bi gûşî li ser hev in.
**30.** Sîyên dirêjbûyî.
**31.** Avên bênavber diherike.
**32.** Fêkîyên pirzêde.
**33.** (Fêkîyên) ne xelas dibin û ne jî tên qedexekirin.
**34.** Û li ser binraxên/doşekên bilindkirî ne.
**35.** Bêguman me, (jinên cennetê) ji nû ve xuliqandîye.
**36.** Me ew kirine kêçên xama/bakire.
**37.** Evîndarên hevjînên xwe û hevsal in.
**38.** (Ev nîmetên ha) ji bo Eshabu’l Yemîn e (ku defterê amelên wan ji milê rastê tê dayîn).
**39.** Pirên wan ji ummetên borî ne.
**40.** Gelek ji wan jî (dê) ji yên paşîn (bin).
**41.** Ew Eshabu’l Şîmal (ên ku defterê amelên xwe ji milê çepê dê bistînin), çi Eshabu’l Şîmal e!
**42.** Ew di nava agirê diqewirîne/diperitîne û ava kelandî de ne.
**43.** Û di nava sîyekî ji dûyê de ne.
**44.** Ne hênik e û ne jî bi feyde!
**45.** Bêguman ew berî niha di nav xweşîyê de bi rûdayî/bi şaqizî dijîyan.
**46.** Di wê guneha mezin (di şirkê) de jî israr dikirin.
**47.** Digotin: “Piştî ku em mirin û bibin xwelî û hestî em ê hêj nû de bêne vejandin?”
**48.** “Bavûkalên me jî?”
**49.** Bibêje: “Ew ên pêşîn û ew ên paşîn.”
**50.** Di dema têzanîn/malum (qiyametê) ya diyarkirî de helbet wê bêne civandin.

ثُمَّ اِنَّكُمْ اَيُّهَا الضَّٓالُّونَ الْمُكَذِّبُونَۙ ﴿٥١﴾ لَاٰكِلُونَ مِنْ شَجَرٍ
مِنْ زَقُّومٍۙ ﴿٥٢﴾ فَمَالِؤُ۫نَ مِنْهَا الْبُطُونَۚ ﴿٥٣﴾ فَشَارِبُونَ عَلَيْهِ
مِنَ الْحَم۪يمِۚ ﴿٥٤﴾ فَشَارِبُونَ شُرْبَ الْه۪يمِۜ ﴿٥٥﴾ هٰذَا نُزُلُهُمْ يَوْمَ الدّ۪ينِۜ ﴿٥٦﴾
نَحْنُ خَلَقْنَاكُمْ فَلَوْلَا تُصَدِّقُونَ ﴿٥٧﴾ اَفَرَاَيْتُمْ مَا تُمْنُونَۜ ﴿٥٨﴾ ءَاَنْتُمْ
تَخْلُقُونَهُٓ اَمْ نَحْنُ الْخَالِقُونَ ﴿٥٩﴾ نَحْنُ قَدَّرْنَا بَيْنَكُمُ الْمَوْتَ
وَمَا نَحْنُ بِمَسْبُوق۪ينَۙ ﴿٦٠﴾ عَلٰٓى اَنْ نُبَدِّلَ اَمْثَالَكُمْ وَنُنْشِئَكُمْ
ف۪ي مَا لَا تَعْلَمُونَ ﴿٦١﴾ وَلَقَدْ عَلِمْتُمُ النَّشْاَةَ الْاُو۫لٰى فَلَوْلَا تَذَكَّرُونَ ﴿٦٢﴾
اَفَرَاَيْتُمْ مَا تَحْرُثُونَۜ ﴿٦٣﴾ ءَاَنْتُمْ تَزْرَعُونَهُٓ اَمْ نَحْنُ الزَّارِعُونَ ﴿٦٤﴾
لَوْ نَشَٓاءُ لَجَعَلْنَاهُ حُطَامًا فَظَلْتُمْ تَفَكَّهُونَ ﴿٦٥﴾ اِنَّا لَمُغْرَمُونَۙ ﴿٦٦﴾
بَلْ نَحْنُ مَحْرُومُونَ ﴿٦٧﴾ اَفَرَاَيْتُمُ الْمَٓاءَ الَّذ۪ي تَشْرَبُونَۜ ﴿٦٨﴾
ءَاَنْتُمْ اَنْزَلْتُمُوهُ مِنَ الْمُزْنِ اَمْ نَحْنُ الْمُنْزِلُونَ ﴿٦٩﴾ لَوْ نَشَٓاءُ
جَعَلْنَاهُ اُجَاجًا فَلَوْلَا تَشْكُرُونَ ﴿٧٠﴾ اَفَرَاَيْتُمُ النَّارَ الَّت۪ي تُورُونَۜ ﴿٧١﴾
ءَاَنْتُمْ اَنْشَاْتُمْ شَجَرَتَهَٓا اَمْ نَحْنُ الْمُنْشِؤُ۫نَ ﴿٧٢﴾ نَحْنُ جَعَلْنَاهَا
تَذْكِرَةً وَمَتَاعًا لِلْمُقْو۪ينَۚ ﴿٧٣﴾ فَسَبِّحْ بِاسْمِ رَبِّكَ الْعَظ۪يمِ ﴿٧٤﴾
فَلَٓا اُقْسِمُ بِمَوَاقِعِ النُّجُومِۙ ﴿٧٥﴾ وَاِنَّهُ لَقَسَمٌ لَوْ تَعْلَمُونَ عَظ۪يمٌۙ ﴿٧٦﴾

**51.** “Paşê hûn, gelî derewkarên rêşaş!”
**52.** “Helbet, hûn ê ji dara zequmê/rûlê bixwin.”
**53.** “Û hûn ê (ji wê darê) zikên xwe tije bikin.”
**54.** “Hûn ê di ser wê de jî ji ava kelandî vexwin.”
**55.** “Wekî deveyên nexweş ku çiqas vedixwin jî tî bûna wan zêdetir dibe, hûn ê jê vexwin.”
**56.** Ev, zîyafeta wan a roja qiyametê yê!
**57.** Me hûn xuliqandin. Ma ne hewceye hûn tesdîq bikin (ku em ê bivejînin)?
**58.** Erê, ma ew menîya/avika ku hûn dirijînin we dît?
**59.** Ma qey hûn wê dixuliqînin an na yê xaliq em in?
**60.** Ew ê ku di nav we de mirin teqdîr kiriye em in û tu kes nikare bikeve pêşîya me (bibe asteng).




**61.** Di mijara ku em di şûna we de (însan) ên wekî we bînin û we bi sûreteke ku hûn pê nizanin ji nû ve we bixuliqînin de (tu kes nikare ji me re bibe asteng).
**62.** Sond be ku hûn bi xuliqandina pêşîn serwext bûn/we pejirand. Ma ne hewceye ku hûn (di mijara fêmkirina qudreta Allah û ji nû de vejandina wî de) bifikirin û şîret bigirin?
**63.** Ew (tovê) ku hûn diçînin, we dît?
**64.** Ma (ew ê ku wê dixe rewşa hêşînahîyê) hûn in an em in yê ku heşîn dike?
**65.** Eger me bixwesta me yê ew bianîna rewşeke haşiş/kewaşe (bê fêkî û bê sebze û bê tene) û hûn ê jî matmayî bimana.
**66.** (We yê bigotana:) “Bêşik em ketin bin deynekî giran.”
**67.** “(Na!) Ya rast, em bêpar hatin hiştin.”
**68.** Ava ku hûn vedixwin we dît?
**69.** Ma we ew ji ewran daxistîye an na em in yê ku wê dadixîne?
**70.** Eger me bixwesta me yê ew bikira aveke şor. Ma ne hewceye ku hûn şikur bikin?
**71.** Ew agirê ku hûn pêdixin, we dît?
**72.** Ma qey dara wî, we xuliqandîye an na yê ew xuliqandîye em in?
**73.** Me ew, hem kiriye bibîrxistinek/şîretek û hem jî ji bo kesên hewcedar re kiriye metayekî ku jê sûdmend bibin.
**74.** Di wê rewşê de, tu Rabbê xwe yê mezin bi navê wî tesbîh bike.
**75.** Bi cihê stêrkan (ku dertên û winda dibin) sond dixwim.
**76.** Qet tu guman tune, eger hûn bizanibin (ev) sondeke mezin e.

اِنَّهُ لَقُرْاٰنٌ كَر۪يمٌۙ ﴿٧٧﴾ ف۪ي كِتَابٍ مَكْنُونٍۙ ﴿٧٨﴾ لَا يَمَسُّهُٓ اِلَّا الْمُطَهَّرُونَۜ ﴿٧٩﴾
تَنْز۪يلٌ مِنْ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿٨٠﴾ اَفَبِهٰذَا الْحَد۪يثِ اَنْتُمْ مُدْهِنُونَۙ ﴿٨١﴾
وَتَجْعَلُونَ رِزْقَكُمْ اَنَّكُمْ تُكَذِّبُونَ ﴿٨٢﴾ فَلَوْلَٓا اِذَا بَلَغَتِ الْحُلْقُومَۙ ﴿٨٣﴾
وَاَنْتُمْ ح۪ينَئِذٍ تَنْظُرُونَۙ ﴿٨٤﴾ وَنَحْنُ اَقْرَبُ اِلَيْهِ مِنْكُمْ وَلٰكِنْ لَا تُبْصِرُونَ ﴿٨٥﴾
فَلَوْلَٓا اِنْ كُنْتُمْ غَيْرَ مَد۪ين۪ينَۙ ﴿٨٦﴾ تَرْجِعُونَهَٓا اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ ﴿٨٧﴾
فَاَمَّٓا اِنْ كَانَ مِنَ الْمُقَرَّب۪ينَۙ ﴿٨٨﴾ فَرَوْحٌ وَرَيْحَانٌ وَجَنَّتُ نَع۪يمٍ ﴿٨٩﴾
وَاَمَّٓا اِنْ كَانَ مِنْ اَصْحَابِ الْيَم۪ينِۙ ﴿٩٠﴾ فَسَلَامٌ لَكَ مِنْ اَصْحَابِ الْيَم۪ينِ ﴿٩١﴾
وَاَمَّٓا اِنْ كَانَ مِنَ الْمُكَذِّب۪ينَ الضَّٓالّ۪ينَۙ ﴿٩٢﴾ فَنُزُلٌ مِنْ حَم۪يمٍۙ ﴿٩٣﴾ وَتَصْلِيَةُ
جَح۪يمٍۙ ﴿٩٤﴾ اِنَّ هٰذَا لَهُوَ حَقُّ الْيَق۪ينِۚ ﴿٩٥﴾ فَسَبِّحْ بِاسْمِ رَبِّكَ الْعَظ۪يمِ ﴿٩٦﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
سَبَّحَ لِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۚ وَهُوَ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُ ﴿١﴾
لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۚ يُحْي۪ي وَيُم۪يتُۚ وَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿٢﴾
هُوَ الْاَوَّلُ وَالْاٰخِرُ وَالظَّاهِرُ وَالْبَاطِنُۚ وَهُوَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَل۪يمٌ ﴿٣﴾

**77.** Qet guman tune ew, Qur'ana Kerîm e.

**78.** Di Kitêbekê (ji însanan) veşartî (û parastî) de nivîsandî ye.

**79.** Ji kesên paqijkirî pê ve tu kes nikare dest bide (wê Kitêbê).

**80.** Ji hêla/ji alîyê wî (Allah) yê Rabbê aleman ve hatîye daxistin.

**81.** Ma qey hûn niha vê peyvê diderewînin?

**82.** Ma hûn ji bo rizqê xwe (yê madî û manewî) bi derewandinê spasîyê dikin?!

**83.** Dema ku can digihîje qirikê.

**84.** Wê demê hûn di rewşa lê rênînê de ne.

**85.** Em ji we zêdetir nêzîkî wî ne, lê hûn nabînin.

**86.** Di roja cezayê de eger (wekî ku hûn îdîa dikin, hûn neyên vejandin û) nekêşin hisabê,

**87.** Eger hûn rast dibêjin, ka wê (canê xwe yê li ber derketinê) paş de vegerînin!

**88.** Eger ew ji wan ên nêzgirtîyan/muqerrebînan be,

**89.** Jê re rihetî û riziq û "Cenneta Naîm" heye.

**90.** Eger ew ji Eshabu'l Yemîn be,

**91.** Silav li te be ya Eshabu'l Yemîn!

**92.** Lê eger ew ji derewkarên rêşaş be.

**93.** Zîyafetekî ji ava kelandî.

**94.** Û werkirina bi cehennemê ve (li hêvîya wî ye).

**95.** Bêguman ev, heqîya qethî bixwe ye.

**96.** Di wê rewşê de, Rabbê xwe yê mezin bi navê wî tesbîh bike.



## 57. SÛREYA HADÎD

*(Sûreya Hadîd, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û bîst û neh (29) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya pêncî û heftemîn e. Hadîd, tê ser maneya hesin. Ev peyv di ayeta 25. de dibore û sûre jî bi vê peyvê binav bûye. Sifetên Allah (ac) û delîlên ilim û qûdreta wî û pêdivîtîya îman anîn û qencîkarî û rewşa mûmînan û munafiqan ya li axîretê û maneya jiyana dinyayê û têgihana rûhbantîya di Xirîstanîyê de tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Her çi tiştên li erd û esmanan hene, Allah tesbîh dikin. Ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**2.** Serwerîya/hakimîyeta erd û esmanan aîdê wî ye. Divejîne û dimirîne. Ew, qadirê her tiştî ye.

**3.** Ew, (yê ku qadîm û ezelî) Ewwel û (yê ku mayînde û bêdawî) Axîr û (yê ku delîlên hebûna wî vikîvekirî ye) Zahîr û (yê ku aqil heqîqeta wî bitemamî nikare îdraq bike û nêzî evdên xwe ye) Batin e û ew zanayê her tiştî ye.

هُوَ الَّذٖى خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ فٖى سِتَّةِ اَيَّامٍ ثُمَّ اسْتَوٰى
عَلَى الْعَرْشِۜ يَعْلَمُ مَا يَلِجُ فِى الْاَرْضِ وَمَا يَخْرُجُ مِنْهَا وَمَا يَنْزِلُ
مِنَ السَّمَٓاءِ وَمَا يَعْرُجُ فٖيهَاۜ وَهُوَ مَعَكُمْ اَيْنَ مَا كُنْتُمْۜ وَاللّٰهُ بِمَا
تَعْمَلُونَ بَصٖيرٌ ﴿٤﴾ لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَاِلَى اللّٰهِ تُرْجَعُ
الْاُمُورُ ﴿٥﴾ يُولِجُ الَّيْلَ فِى النَّهَارِ وَيُولِجُ النَّهَارَ فِى الَّيْلِۜ وَهُوَ عَلٖيمٌ
بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٦﴾ اٰمِنُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِهٖ وَاَنْفِقُوا مِمَّا جَعَلَكُمْ
مُسْتَخْلَفٖينَ فٖيهِۜ فَالَّذٖينَ اٰمَنُوا مِنْكُمْ وَاَنْفَقُوا لَهُمْ اَجْرٌ كَبٖيرٌ ﴿٧﴾
وَمَا لَكُمْ لَا تُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِۚ وَالرَّسُولُ يَدْعُوكُمْ لِتُؤْمِنُوا بِرَبِّكُمْ
وَقَدْ اَخَذَ مٖيثَاقَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿٨﴾ هُوَ الَّذٖى يُنَزِّلُ
عَلٰى عَبْدِهٖٓ اٰيَاتٍ بَيِّنَاتٍ لِيُخْرِجَكُمْ مِنَ الظُّلُمَاتِ اِلَى النُّورِۜ
وَاِنَّ اللّٰهَ بِكُمْ لَرَؤُ۫فٌ رَحٖيمٌ ﴿٩﴾ وَمَا لَكُمْ اَلَّا تُنْفِقُوا فٖى سَبٖيلِ اللّٰهِ
وَلِلّٰهِ مٖيرَاثُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ لَا يَسْتَوٖى مِنْكُمْ مَنْ اَنْفَقَ
مِنْ قَبْلِ الْفَتْحِ وَقَاتَلَۜ اُو۬لٰٓئِكَ اَعْظَمُ دَرَجَةً مِنَ الَّذٖينَ اَنْفَقُوا
مِنْ بَعْدُ وَقَاتَلُواۜ وَكُلًّا وَعَدَ اللّٰهُ الْحُسْنٰىۜ وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبٖيرٌ ﴿١٠﴾
مَنْ ذَا الَّذٖى يُقْرِضُ اللّٰهَ قَرْضًا حَسَنًا فَيُضَاعِفَهُ لَهُ وَلَهُٓ اَجْرٌ كَرٖيمٌ ﴿١١﴾

**4.** Ew ê ku erd û esman di şeş rojan de xuliqandîye û piştre li ser arşê îstîwa kiriye ew e. Ew, bi ya ku dikeve erdê û bi ya ku jê derdikeve û bi ya ku ji esman tê xwarê û bi ya ku hildikişe esman jî dizane. Hûn li ku derê bin ew, ligel we ye. Allah, li ser karûkirinên we bîner e.

(Îstîwa kirina Allah (ac) ya li ser erşê, çawa nabe asteng ku her daîm bi ilmê xwe û bi dîtina xwe û bi dorpêçkirina xwe ligel evdên xwe ye, weke vê, ji bo bi zat û sifetên xwe ji herî berz/bilind (Alîy) bûna wî re jî nabe asteng. Ji hevgirtina/bitûnîya Qur'an û sunnetê em fêm dikin ku; Allah (ac) li ser heft qet esman de îstîwayê erşê kiriye; bi dîtina xwe û bi sehkirina xwe û bi ilmê xwe her daîm ligel evdên xwe ye. Wekî din, der heqê nav û sifetên Allah (ac) de bnr. 3/Âl-î Îmran, 181; 7/A'râf, 180; 42/Şûrâ, 11)

**5.** Serwerîya/hakimîyeta erd û esmanan aîdê wî ye. Hemû kar bi bal Allah ve tên vegerandin.

**6.** Şevê bi rojê ve û rojê jî bi şevê ve dixe. Ew, bi ya ku di singan de veşartîye dizane.

**7.** Îman bi Allah û bi rasûlê wî bînin. Ji (mal) ên ku we li ser wan kiriye xwedî raye înfaq bikin. Ji we, yên ku îman anîne û înfaq dikin re xelateke mezin heye.

**8.** Çi dibe ji we; digel ku pêxember hûn gazî bawerîya bi Rabbê we ve dike lê hûn îman bi Allah naynin? Jixwe (li ser îman anîna we) peymaneke asê ji we stendibû. Eger hûn mûmîn bin (pêwistîya vê vexwendinê û ehda xwe pêk bînin).

**9.** Ji bo ku we ji tarîtîyan bi bal ronahîyê ve derxîne, ayetên vikîvekirî li ser evdê xwe daxistîye ew e. Bêguman Allah, li ser we (yê bi şefqet) Raûf û (yê bi merhamet) Rahîm e.

**10.** Digel ku mîratên erd û esmanan aîdê Allah in, ma çi dibe ji we ku hûn înfaq nakin? Ji nava we ew ê ku di berîya fethê de înfaq daye û cîhad kiriye (bi wan ên din re) nabin yek. Evana li îndallah/li cem Allah ji wan ên piştî fethê înfak dabin û cîhad kiribin xwedî dereceyên hê mezintir in. (Ligel vê) Allah, weada xweşîyê daye hemûyan. Allah ji karên we agahdar e.

**11.** Ew (ê bextewar) kî ye deynekî xweşik/rind bide Allah da ku Allah jî qat bi qat zêdetir bide wî? Û ji bo wî xelatekî mezin heye.

يَوْمَ تَرَى الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ يَسْعٰى نُورُهُمْ بَيْنَ اَيْدِيهِمْ
وَبِاَيْمَانِهِمْ بُشْرٰيكُمُ الْيَوْمَ جَنَّاتٌ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ
خَالِدِينَ فِيهَاۜ ذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُۚ ﴿١٢﴾ يَوْمَ يَقُولُ الْمُنَافِقُونَ
وَالْمُنَافِقَاتُ لِلَّذِينَ اٰمَنُوا انْظُرُونَا نَقْتَبِسْ مِنْ نُورِكُمْۚ قِيلَ ارْجِعُوا
وَرَآءَكُمْ فَالْتَمِسُوا نُورًاۜ فَضُرِبَ بَيْنَهُمْ بِسُورٍ لَهُ بَابٌۜ بَاطِنُهُ
فِيهِ الرَّحْمَةُ وَظَاهِرُهُ مِنْ قِبَلِهِ الْعَذَابُۜ ﴿١٣﴾ يُنَادُونَهُمْ اَلَمْ نَكُنْ
مَعَكُمْۜ قَالُوا بَلٰى وَلٰكِنَّكُمْ فَتَنْتُمْ اَنْفُسَكُمْ وَتَرَبَّصْتُمْ وَارْتَبْتُمْ
وَغَرَّتْكُمُ الْاَمَانِيُّ حَتّٰى جَآءَ اَمْرُ اللّٰهِ وَغَرَّكُمْ بِاللّٰهِ الْغَرُورُ ﴿١٤﴾
فَالْيَوْمَ لَا يُؤْخَذُ مِنْكُمْ فِدْيَةٌ وَلَا مِنَ الَّذِينَ كَفَرُواۜ مَاْوٰيكُمُ النَّارُۜ
هِيَ مَوْلٰيكُمْۜ وَبِئْسَ الْمَصِيرُ ﴿١٥﴾ اَلَمْ يَاْنِ لِلَّذِينَ اٰمَنُوٓا اَنْ تَخْشَعَ
قُلُوبُهُمْ لِذِكْرِ اللّٰهِ وَمَا نَزَلَ مِنَ الْحَقِّۙ وَلَا يَكُونُوا كَالَّذِينَ اُوتُوا
الْكِتَابَ مِنْ قَبْلُ فَطَالَ عَلَيْهِمُ الْاَمَدُ فَقَسَتْ قُلُوبُهُمْۜ وَكَثِيرٌ
مِنْهُمْ فَاسِقُونَ ﴿١٦﴾ اِعْلَمُوٓا اَنَّ اللّٰهَ يُحْيِي الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَاۜ قَدْ
بَيَّنَّا لَكُمُ الْاٰيَاتِ لَعَلَّكُمْ تَعْقِلُونَ ﴿١٧﴾ اِنَّ الْمُصَّدِّقِينَ وَالْمُصَّدِّقَاتِ
وَاَقْرَضُوا اللّٰهَ قَرْضًا حَسَنًا يُضَاعَفُ لَهُمْ وَلَهُمْ اَجْرٌ كَرِيمٌ ﴿١٨﴾

**12.** Wê rojê tu dibînî ku nûra mêr û jinên mûmîn li pêşîya wan dibeze û ji milê rastê ve jî (defterê amelên xwe) digirin. (Ji wan re tê gotin:) “Îro, mizgînîya we, cennet in ku di bin wan de çem diherikin û hûn ê di wan de ebedî bimînin. Ev, xelasîya/qezenca mezin bixwe ye.”

**13.** Wê rojê mêr û jinên munafiq, ji mûmînan re dibêjin: “Li hêvîya me bisekinin da ku em ji nûra we parçeyekî wergirin û sûdmend bibin. Ji wan re tê gotin: “Li paş xwe vegerin û li nûr bigerin.” Axir, di navbera wan de sûreke derîyê wî heyî hatîye kişandin ku ji rexê hundir ve rahmet e û ji alîyê derve jî ezab heye.

**14.** Bang (li ehlê cennetê) dikin: “Ma qey em (li dinyayê) ne bi we re bûn?” Dibêjin: “Erê (cisim û bedena we bi me re bû). Lê belê, heta ku emrê Allah (mirin) waqî bû we nefsên xwe bi fitnê xist (li ku derê fitne hebe hûn noqî wê bûn) û we çavnêrî dikir (da ku Feleqet bê serê mûmînan). Hûn ketin gumanê. Gumreşîyan hûn xerandin û ew ê xapînok, we bi Allah xapand.”

**15.** Îro ji we û ji kafiran fidye nayê sitendin. Sitargeha we agir e. Ew, dostê we ye (ku bênavber ligel we ye). Ew, çi cihlêvegereke xerab e.

**16.** Erê ma ji ew ên îman anîne re hê jî wext nehatîye ku qelbên wan bi zikra Allah û bi heqîya (ji ayetên Qur'anê) daxistî ye nerm bibe? Bila ew nebin wekî wan ên berê ku kitêb ji wan re hatibû û di ser wan de demeke dirêj borî bû û qelbên wan hişk bibû û pirên wan bibûn ji fasiqan.

**17.** Bizanibin ku Allah, piştî mirina wê heyat dide erdê. Ji bo ku hûn aqil bigirin em ayetan ji we re beyan dikin.

**18.** Qet guman tune, mêr û jinên ku sedeqe didin û ew ên deynê xweşik/qerzê hesen didin Allah, ecira/berdêla wan qat bi qat tê zêdekirin û ji bo wan xelateke bi qîmet heye.

وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا بِاللّٰهِ وَرُسُلِه۪ٓ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الصِّدّ۪يقُونَ وَالشُّهَدَٓاءُ
عِنْدَ رَبِّهِمْۜ لَهُمْ اَجْرُهُمْ وَنُورُهُمْۜ وَالَّذ۪ينَ كَفَرُوا وَكَذَّبُوا
بِاٰيَاتِنَٓا اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ الْجَح۪يمِ ﴿١٩﴾ اِعْلَمُٓوا اَنَّمَا الْحَيٰوةُ
الدُّنْيَا لَعِبٌ وَلَهْوٌ وَز۪ينَةٌ وَتَفَاخُرٌ بَيْنَكُمْ وَتَكَاثُرٌ
فِي الْاَمْوَالِ وَالْاَوْلَادِۜ كَمَثَلِ غَيْثٍ اَعْجَبَ الْكُفَّارَ نَبَاتُهُ ثُمَّ
يَه۪يجُ فَتَرٰيهُ مُصْفَرًّا ثُمَّ يَكُونُ حُطَامًاۜ وَفِي الْاٰخِرَةِ عَذَابٌ
شَد۪يدٌۙ وَمَغْفِرَةٌ مِنَ اللّٰهِ وَرِضْوَانٌۜ وَمَا الْحَيٰوةُ الدُّنْيَٓا اِلَّا مَتَاعُ
الْغُرُورِ ﴿٢٠﴾ سَابِقُٓوا اِلٰى مَغْفِرَةٍ مِنْ رَبِّكُمْ وَجَنَّةٍ عَرْضُهَا
كَعَرْضِ السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِۙ اُعِدَّتْ لِلَّذ۪ينَ اٰمَنُوا بِاللّٰهِ وَرُسُلِه۪ۜ
ذٰلِكَ فَضْلُ اللّٰهِ يُؤْت۪يهِ مَنْ يَشَٓاءُۜ وَاللّٰهُ ذُو الْفَضْلِ الْعَظ۪يمِ ﴿٢١﴾
مَٓا اَصَابَ مِنْ مُص۪يبَةٍ فِي الْاَرْضِ وَلَا ف۪ٓي اَنْفُسِكُمْ
اِلَّا ف۪ي كِتَابٍ مِنْ قَبْلِ اَنْ نَبْرَاَهَاۜ اِنَّ ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَس۪يرٌۚ ﴿٢٢﴾
لِكَيْلَا تَأْسَوْا عَلٰى مَا فَاتَكُمْ وَلَا تَفْرَحُوا بِمَٓا اٰتٰيكُمْۜ وَاللّٰهُ
لَا يُحِبُّ كُلَّ مُخْتَالٍ فَخُورٍۙ ﴿٢٣﴾ اَلَّذ۪ينَ يَبْخَلُونَ وَيَأْمُرُونَ
النَّاسَ بِالْبُخْلِۜ وَمَنْ يَتَوَلَّ فَاِنَّ اللّٰهَ هُوَ الْغَنِيُّ الْحَم۪يدُ ﴿٢٤﴾

**19.** Ew ên îman bi Allah û bi rasûlên wî anîne, ha evana li cem Rabbê xwe siddîq (yên dil û derê wan rast) û şahid/şehîd in. Ji wan re xelat û nûra wan heye. Ew ên ayetên me înkar dikin û diderewînin jî ewana ehlê cehennemê ne.

**20.** Bizanibin ku jiyana dinyayê ji lîstikê û kêf û xeml û (wasiteya) pêpesinîna we ya di navbera xwe de û (pêşbazîya) zêdekirina mal û ewlad pêkhatî ye. Wekî barana ku çandinîyê (heşîn dike) li xweşa cotkaran diçe. (Piştî tezetî û jîndarîya dilkêş) tu dibînî ku hişk û zipîzer dibe. Paşê jî dibe pûş û pelaxên belavbûyî. Di axîretê de jî ezabekî dijwar û mexfîretek ji Allah û razîbûn heye. Heyata dinyayê, ji sûdmendîyeke xapînok pê ve ne tiştekî din e.

**21.** Bi bal mexfîreta Rabbê xwe ve û bi bal wê cenneta ku firehîya wê bi qasî erd û esmanan e ve bilezînin/bibezin. (Ew) ji bo wan ên îman bi Allah û rasûlên wî anîne re hatîye amadekirin. Ev, lutf û îhsana Allah e, ji kî re bixwaze dide wî. Allah, xwedî lutfeke mezin e.

**22.** Li ser rûyê erdê an jî di nefsa we de her çi musîbetek çêdibe, berîya ku bê xuliqandin muheqeq di Kitêbekê de nivîsandî ye. Bêguman ev, ji Allah re hêsan e.

**23.** (Nivîsandina her tiştê di Lewhê Mehfûz de) ji bo vê ye ku; bi ya ji destê we derket hûn pê xemgîn nebin û bi ya ku ji we re hate dayîn jî hûn (bi wê) bi ser xwe de neçin. Allah, hez wan kesên qure û yê xwe dinepixînin nake.

(Îmana bi qederê, mirovan ji evdîtîya eşyayan û bûyeran û ji nexweş ketina şaqizîtîya hebûnîyê û jibîr kirina tûnetîyê diparêze. Ew kesê bizanibe ku hebûn û tûnebûn û nîmet û musîbet ji hêla/ji alîyê Allah ve hatine teqdîrkirin û ya ku hatîye nivîsandin teqez pêk tê, ji ya ku jê re hatîye teqdîrkirin razî ye û teslîmî Allah (ac) dibe. Şikur a ku îmtîhana nîmetan e û sebir a ku îmtîhana musîbetan e wê bi heqî pêk tîne.)

**24.** Ew in ku; qesîsî dikin û qesîsîyê li însanan jî emir dikin. Kî jî (ji îtaeta Allah) rû vegerîne Allah, (ew ê her tişt muhtacê wî ye lê ew ne hewcedarê tu kesî) Xenîy û (yê ku herî zêde hemd û pesinandinê heq dike û ji alîyê heyînan ve tê pesinandin) Hamîd e.

لَقَدْ اَرْسَلْنَا رُسُلَنَا بِالْبَيِّنَاتِ وَاَنْزَلْنَا مَعَهُمُ الْكِتَابَ
وَالْميزَانَ لِيَقُومَ النَّاسُ بِالْقِسْطِۚ وَاَنْزَلْنَا الْحَديدَ فيهِ بَأْسٌ
شَديدٌ وَمَنَافِعُ لِلنَّاسِ وَلِيَعْلَمَ اللّٰهُ مَنْ يَنْصُرُهُ وَرُسُلَهُ بِالْغَيْبِۜ
اِنَّ اللّٰهَ قَوِيٌّ عَزيزٌ ﴿٢٥﴾ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا نُوحًا وَاِبْرٰهيمَ وَجَعَلْنَا
في ذُرِّيَّتِهِمَا النُّبُوَّةَ وَالْكِتَابَ فَمِنْهُمْ مُهْتَدٍۚ وَكَثيرٌ مِنْهُمْ
فَاسِقُونَ ﴿٢٦﴾ ثُمَّ قَفَّيْنَا عَلٰٓى اٰثَارِهِمْ بِرُسُلِنَا وَقَفَّيْنَا بِعيسَى
ابْنِ مَرْيَمَ وَاٰتَيْنَاهُ الْاِنْجيلَ وَجَعَلْنَا في قُلُوبِ الَّذينَ اتَّبَعُوهُ
رَأْفَةً وَرَحْمَةًۜ وَرَهْبَانِيَّةًۨ ابْتَدَعُوهَا مَا كَتَبْنَاهَا عَلَيْهِمْ
اِلَّا ابْتِغَٓاءَ رِضْوَانِ اللّٰهِ فَمَا رَعَوْهَا حَقَّ رِعَايَتِهَاۚ فَاٰتَيْنَا
الَّذينَ اٰمَنُوا مِنْهُمْ اَجْرَهُمْۚ وَكَثيرٌ مِنْهُمْ فَاسِقُونَ ﴿٢٧﴾
يَٓا اَيُّهَا الَّذينَ اٰمَنُوا اتَّقُوا اللّٰهَ وَاٰمِنُوا بِرَسُولِه يُؤْتِكُمْ
كِفْلَيْنِ مِنْ رَحْمَتِه وَيَجْعَلْ لَكُمْ نُورًا تَمْشُونَ
بِه وَيَغْفِرْ لَكُمْۜ وَاللّٰهُ غَفُورٌ رَحيمٌۙ ﴿٢٨﴾ لِئَلَّا يَعْلَمَ اَهْلُ
الْكِتَابِ اَلَّا يَقْدِرُونَ عَلٰى شَيْءٍ مِنْ فَضْلِ اللّٰهِ وَاَنَّ
الْفَضْلَ بِيَدِ اللّٰهِ يُؤْتيهِ مَنْ يَشَٓاءُۜ وَاللّٰهُ ذُو الْفَضْلِ الْعَظيمِ ﴿٢٩﴾

**25.** Sond be me rasûlên xwe (bi delîlên) eşkere şandin. Ji bo ku însan edaletê qayîm bikin me ligel wan Kitêb û mîzan (pîvana edaletê) daxist. (Wekî din) me hesin jî daxist ku tê de hêzek mezin û ji bo însanan gelek feyde hene. Heta ku Allah, di xiyabê de (digel ku tu kes wan nabîne) ew ên alîkarîya Allah û rasûlên wî dikin derxîne holê û wan veqetîne. Bêguman Allah, (yê xwedî hêz û quwwet) Qawîy û (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz e.

**26.** Sond be ku me Nûh û Îbrahîm jî şand û pêxemberîtî û Kitêb dabû zurîyetên her duyan. Ji wan hinek ehlê hîdayetê ne. Pirên wan jî fasiq in.

**27.** Piştre, rasûlên xwe yên peyrevên wan in di pey hevdu de şandin. Me Îsayê kurê Meryem jî di pey wan de şand. Me Încîl dabû wî û di qelbên wan ên bibûn tabiê wî de şefqet û merhamet çêkir. Ew ruhbanîtî (ya dest kişandina ji heyatê û bitenê meşxulîyeta bi îbadetan) wek bîdet xistine holê, me li ser wan ferz nekiribû. Ji bo bi dest xistina razîbûna Allah (di dîn de wek nûyîtîyek/nûjenîyek) kirin lê heqê wê jî pêk neanîn. Me ecira mûmînên ji nava wan daye. Pirên wan fasiq in.

(Allah (ac); rasûlên xwe ji bo ku civak bi tewhîdê islah bikin û ser rûyê erdê bi xêr ava/îmar bikin û edaletê qayîm bikin şandîye. Hilkişîna şikeftan û di nav civaka îslâmê de terikandina cemaetê, yanê terka isleha civakê û pirzêde sekna li ser isleha ferdî ne rêya pêxemberan e. Filleyan, ji ber ku zehmetîya isleha civaka xerabûyî ne didan ber çavê xwe, rabûn ruhbanîtî îcat kirin û bîdet derxistin. Berê xwe bi birçîbûnê û bi tenêbûnê dane jiyaneke xamoşan/munzewî ku ev rewş însanan li dij wesweseyên şeytanan bêsitar dihêle. Ji bo islehê ketibûn nava şikeftan, lê belê bi aqîdeya teslîsê û wek kahînan û bûne kesên ku bi cin û şeytanan re di têkilîyê de ne ji nav şikeftan derketin. Li ser vê bingehê, ew kesê ku bixwaze nefsa xwe paqij bike û civakê isleh bike, mecbure ku bibe tabiê rêya pêxemberan. Her tetbîqa/kiryarîya derê sunnetê ya ku ne li gor rêbaza pêxemberan e, dijberîtîya rasûl (ass) bixwe ye. Û her dijberîtî jî mehkûmê encama ezaba axîretê û fitneyeke dînî-dinyewî ye. (Bnr. 24/Nûr, 63))

**28.** Gelî ew ên îman anîne! Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin û îman bi Rasûlê wî bînin da ku; ji rahmeta xwe du qat bide we û ji we re bike nûrek ku hûn pê bimeşin û (gunehên we) bibexşîne. Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**29.** Heta yên Ehlê Kitêb bizanibin ku (bi pêşnîyazên ziwa) lutf û îhsana Allah nikarin bi dest bixin, lutuf di destê Allah de ye û ew ji kî re bixwaze dide wî. Allah, xwedî lutf û îhsana mezin e.




## 58. SÛREYA MUCÂDELE

*(Sûreya Mucâdele, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û bîst û du (22) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya pêncî û heştemîn e. Maneya peyva Mucâdele nîqaşkirin e. Sûre jî wek sûreya Mucâdele hatîye binav kirin. Di sûreyê de mijarên xeletîya zihar ku di jiyana malbatî de kevneşopekî kevin e û Allah (ac) agahdarê her tiştî ye û çewtîya pistepista çend kesan ya di nava cîvatekî de û kesên mûmîn ku wê di cennetê de bêdawî bimînin tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Muheqeq Allah, peyva wê jina ku der barê mêrê xwe de bi te re cidal/nîqaş dike û gilîyê xwe digihîne Allah seh kir. Allah, axaftina we ya berhemberê hevdu bihîst. Bêguman Allah (yê ku hemû tiştan dibihîze û îcabetî dûayan dike) Semî û (yê ku her tiştî dibîne) Basîr e

**2.** Ji nav we, ew kesên ku (bi gotina "Tu ji min re wekî pişta dêya min î") û bi jinên xwe re zihâr dikin (bila bizanibin ku bi vê gotinê) jinên wan nabin dêyên wan. Dêyên wan, enceq ew ên ku wan welidandine. Qet guman tune ku ew gotineke munker û derew/dûrî heqîyê dibêjin. Bêguman Allah (yê ku gunehan efû dike) Afûw û (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr e.

**3.** Ew ên bi jinên xwe re zihâr dikin û paşê ji gotina xwe vedigerin, berîya ligelhevîya bi jinên xwe re bila koleyekî azad bikin. Ev şîret e ku li we hatîye kirin. Allah, ji kirinên we agahdar e.

سُورَةُ الْمُجَادَلَةِ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ اثْنَتَانِ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
قَدْ سَمِعَ اللّٰهُ قَوْلَ الَّت۪ي تُجَادِلُكَ ف۪ي زَوْجِهَا وَتَشْتَك۪ٓي اِلَى اللّٰهِۗ وَاللّٰهُ
يَسْمَعُ تَحَاوُرَكُمَاۜ اِنَّ اللّٰهَ سَم۪يعٌ بَص۪يرٌ ﴿١﴾ اَلَّذ۪ينَ يُظَاهِرُونَ مِنْكُمْ
مِنْ نِسَٓائِهِمْ مَا هُنَّ اُمَّهَاتِهِمْۜ اِنْ اُمَّهَاتُهُمْ اِلَّا الّٰٓـ۪ٔي وَلَدْنَهُمْۜ وَاِنَّهُمْ
لَيَقُولُونَ مُنْكَرًا مِنَ الْقَوْلِ وَزُورًاۜ وَاِنَّ اللّٰهَ لَعَفُوٌّ غَفُورٌ ﴿٢﴾
وَالَّذ۪ينَ يُظَاهِرُونَ مِنْ نِسَٓائِهِمْ ثُمَّ يَعُودُونَ لِمَا قَالُوا فَتَحْر۪يرُ رَقَبَةٍ
مِنْ قَبْلِ اَنْ يَتَمَٓاسَّاۜ ذٰلِكُمْ تُوعَظُونَ بِه۪ۜ وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ خَب۪يرٌ ﴿٣﴾
فَمَنْ لَمْ يَجِدْ فَصِيَامُ شَهْرَيْنِ مُتَتَابِعَيْنِ مِنْ قَبْلِ اَنْ يَتَمَٓاسَّاۚ
فَمَنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَاِطْعَامُ سِتّ۪ينَ مِسْك۪ينًاۜ ذٰلِكَ لِتُؤْمِنُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِه۪ۜ
وَتِلْكَ حُدُودُ اللّٰهِۜ وَلِلْكَافِر۪ينَ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٤﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يُحَٓادُّونَ اللّٰهَ
وَرَسُولَهُ كُبِتُوا كَمَا كُبِتَ الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْ وَقَدْ اَنْزَلْنَٓا اٰيَاتٍ بَيِّنَاتٍۜ
وَلِلْكَافِر۪ينَ عَذَابٌ مُه۪ينٌۚ ﴿٥﴾ يَوْمَ يَبْعَثُهُمُ اللّٰهُ جَم۪يعًا فَيُنَبِّئُهُمْ
بِمَا عَمِلُواۜ اَحْصٰيهُ اللّٰهُ وَنَسُوهُۜ وَاللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ شَه۪يدٌ ﴿٦﴾

**4.** Lê ew kesê ku îmkana wî (ji azadkirina kole re) tune be, bila du mehan li pey hev/bênavber rojî bigire. Kesê nikaribe (vê jî pêk bîne) bila şêst heb feqîran têr bike. Ev, ji bo ku hûn îman bi Allah û bi pêxemberê wî bînin. Ha ev, sînorên Allah in. Ji bo kafiran ezabekî biêş û jan heye.

**5.** Ew ên (sînor û qanûnên wan nas nakin û bi danîna hin sînor û qanûnên din) bi Allah û bi rasûlê wî re dijberîyê dikin; yên berîya wan çawa kêmxistî û riswa bûne ew ê jî wê wekî wan bên kêmxistin û riswakirin. Muheqeq me, ayetên eşkere daxistîye. Ji bo kafiran ezabekî riswaker heye.

**6.** Allah, roja ku wê wan bi tevahî bivejîne, dê wan bi karûkirinên wan agahdar bike. Allah, (kirinên wan) hejmartîye (qeyd kiriye) lê wan ji bîr kiriye. Allah, şahidê li ser her tiştî ye.

اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِ مَا يَكُونُ
مِنْ نَجْوٰى ثَلٰثَةٍ اِلَّا هُوَ رَابِعُهُمْ وَلَا خَمْسَةٍ اِلَّا هُوَ سَادِسُهُمْ
وَلَٓا اَدْنٰى مِنْ ذٰلِكَ وَلَٓا اَكْثَرَ اِلَّا هُوَ مَعَهُمْ اَيْنَ مَا كَانُوا ثُمَّ
يُنَبِّئُهُمْ بِمَا عَمِلُوا يَوْمَ الْقِيٰمَةِ اِنَّ اللّٰهَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمٌ ﴿٧﴾ اَلَمْ تَرَ
اِلَى الَّذِينَ نُهُوا عَنِ النَّجْوٰى ثُمَّ يَعُودُونَ لِمَا نُهُوا عَنْهُ وَيَتَنَاجَوْنَ
بِالْاِثْمِ وَالْعُدْوَانِ وَمَعْصِيَتِ الرَّسُولِ وَاِذَا جَٓاؤُكَ حَيَّوْكَ بِمَا
لَمْ يُحَيِّكَ بِهِ اللّٰهُ وَيَقُولُونَ فٖٓي اَنْفُسِهِمْ لَوْلَا يُعَذِّبُنَا اللّٰهُ بِمَا نَقُولُ
حَسْبُهُمْ جَهَنَّمُ يَصْلَوْنَهَا فَبِئْسَ الْمَصِيرُ ﴿٨﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا
اِذَا تَنَاجَيْتُمْ فَلَا تَتَنَاجَوْا بِالْاِثْمِ وَالْعُدْوَانِ وَمَعْصِيَتِ الرَّسُولِ
وَتَنَاجَوْا بِالْبِرِّ وَالتَّقْوٰى وَاتَّقُوا اللّٰهَ الَّذٖٓي اِلَيْهِ تُحْشَرُونَ ﴿٩﴾
اِنَّمَا النَّجْوٰى مِنَ الشَّيْطَانِ لِيَحْزُنَ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَلَيْسَ بِضَٓارِّهِمْ
شَيْـًٔا اِلَّا بِاِذْنِ اللّٰهِ وَعَلَى اللّٰهِ فَلْيَتَوَكَّلِ الْمُؤْمِنُونَ ﴿١٠﴾ يَٓا اَيُّهَا
الَّذِينَ اٰمَنُٓوا اِذَا قِيلَ لَكُمْ تَفَسَّحُوا فِي الْمَجَالِسِ فَافْسَحُوا
يَفْسَحِ اللّٰهُ لَكُمْ وَاِذَا قِيلَ انْشُزُوا فَانْشُزُوا يَرْفَعِ اللّٰهُ الَّذِينَ اٰمَنُوا
مِنْكُمْ وَالَّذِينَ اُوتُوا الْعِلْمَ دَرَجَاتٍ وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرٌ ﴿١١﴾

**7.** Ma tu nabînî, ku çi tiştên li erd û esmanan hene Allah bi wan hemûyan dizane? Sê kesên ku di navbera xwe de pistepistê dikin çaremînê wan muheqeq ew (Allah) e. Şeşemînê pênc kesan jî teqez ew (Allah) e. Çi kêmtir û çi zêdetirê wan (ferq nake), her li ku derê bin (Allah) ligel wan e. Paşê roja qiyametê dê wan bi kirinên wan agahdar bike. Bêguman Allah zanayê her tiştî ye.

**8.** Ma ew ên ji kirina pistepistê hatibûn menkirin, te ew nedît? Piştre li ya ku jê hatine men kirin vedigerin; di gunehkarî û di dijminahî û di mijara îsyana pêxember de pistepistê (kûlîs) dikin. Dema ku ew bên cem te, bi silaveke ku Allah bi wê silav nekiriye silav li te dikin. Di dilê xwe de wiha dibêjin: "Ji ber peyvên em dibêjin ma ne hewceye ku Allah em bidana ber ezabê?" Cehennem besî wan e. Ew ê bikevin wê derê. Ew, çi cihlêvegerekî xerab e.

**9.** Gelî ew ên îman anîne! Dema ku hûn pistepistê bikin, li ser gunehkarîyê û dijminahîyê û di îsyana pêxember de pistepistê nekin. (Eger hûn pistepist/kûlîs bikin jî) li ser teqwayê biaxivin. Ji wî Allahê ku hûn ê di hizûra wî de (bên vejandin û) bicivin bitirsin û xwe biparêzin.

**10.** Lê pistepist, ji wan tiştan e ku şeytan (bi teşwîq û xemilandinê) dixwaze mûmînan pê xemgîn bike. Beyî destûra Allah, (şeytan) qet nikare bi tu awayî zerar bide wan. (Nexwe) bila mûmîn, bi tenê tewekkulê Allah bikin.

**11.** Gelî ew ên îman anîne! Dema ku ji we re hate gotin: "Di cîvatê de rê vekin/Xwevekin!" hûn rê vekin da ku Allah jî ji we re (di cennetê de) cih veke. Dema (di mijara îtaeta Allah û Rasûlê wî de) ji we re hate gotin: "Rabin!" hûn jî rabin da ku Allah mûmînên ji we û ew ên ilim ji wan re hatîye dayîn bi dereceyan berz/bilind bike. Allah, ji karên we agahdar e.

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا اِذَا نَاجَيْتُمُ الرَّسُولَ فَقَدِّمُوا بَيْنَ يَدَيْ
نَجْوٰيكُمْ صَدَقَةًۜ ذٰلِكَ خَيْرٌ لَكُمْ وَاَطْهَرُۜ فَاِنْ لَمْ تَجِدُوا فَاِنَّ اللّٰهَ
غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿١٢﴾ ءَاَشْفَقْتُمْ اَنْ تُقَدِّمُوا بَيْنَ يَدَيْ نَجْوٰيكُمْ صَدَقَاتٍۜ
فَاِذْ لَمْ تَفْعَلُوا وَتَابَ اللّٰهُ عَلَيْكُمْ فَاَق۪يمُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا الزَّكٰوةَ
وَاَط۪يعُوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُۜ وَاللّٰهُ خَب۪يرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿١٣﴾ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذ۪ينَ
تَوَلَّوْا قَوْمًا غَضِبَ اللّٰهُ عَلَيْهِمْۜ مَا هُمْ مِنْكُمْ وَلَا مِنْهُمْۙ وَيَحْلِفُونَ
عَلَى الْكَذِبِ وَهُمْ يَعْلَمُونَ ﴿١٤﴾ اَعَدَّ اللّٰهُ لَهُمْ عَذَابًا شَد۪يدًاۜ اِنَّهُمْ سَٓاءَ
مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١٥﴾ اِتَّخَذُٓوا اَيْمَانَهُمْ جُنَّةً فَصَدُّوا عَنْ سَب۪يلِ
اللّٰهِ فَلَهُمْ عَذَابٌ مُه۪ينٌ ﴿١٦﴾ لَنْ تُغْنِيَ عَنْهُمْ اَمْوَالُهُمْ وَلَٓا اَوْلَادُهُمْ
مِنَ اللّٰهِ شَيْـًٔاۜ اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ النَّارِۜ هُمْ ف۪يهَا خَالِدُونَ ﴿١٧﴾ يَوْمَ
يَبْعَثُهُمُ اللّٰهُ جَم۪يعًا فَيَحْلِفُونَ لَهُ كَمَا يَحْلِفُونَ لَكُمْ وَيَحْسَبُونَ
اَنَّهُمْ عَلٰى شَيْءٍۜ اَلَٓا اِنَّهُمْ هُمُ الْكَاذِبُونَ ﴿١٨﴾ اِسْتَحْوَذَ عَلَيْهِمُ
الشَّيْطَانُ فَاَنْسٰيهُمْ ذِكْرَ اللّٰهِۜ اُو۬لٰٓئِكَ حِزْبُ الشَّيْطَانِۜ اَلَٓا اِنَّ حِزْبَ
الشَّيْطَانِ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿١٩﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يُحَٓادُّونَ اللّٰهَ وَرَسُولَهُٓ اُو۬لٰٓئِكَ
فِي الْاَذَلّ۪ينَ ﴿٢٠﴾ كَتَبَ اللّٰهُ لَاَغْلِبَنَّ اَنَا۬ وَرُسُل۪يۜ اِنَّ اللّٰهَ قَوِيٌّ عَز۪يزٌ ﴿٢١﴾

**12.** Gelî ew ên îman anîne! Dema ku hûn bi dizî/wek xafî (pirsgirêkekî xwe bibin cem) pêxember, berîya ku hûn biaxivin sedeqe bidin. Ev, ji bo we herî bixêrtir û paqijtir e. Eger hûn (ji bo dayînê sedeqeyekî) nebînin, bêguman Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.

**13.** Ma qey berîya axaftinên xwe yên bi dizî hûn ji dayîna sedeqeyan tirsîyan? Madem we nekir, Allah toba we qebûl kir. (Di wê rewşê de) nimêja xwe bikin û zekâtê bidin û îtaetî Allah û Rasûlê wî bikin. Allah, ji karûkirinên we agahdar e.

**14.** Ma te ew ên wê civaka ku Allah li wan buxz kiriye ji xwe re wek dost girtine nedît? Ew, ne ji we ne, ne jî ji wan in. Ew, digel ku dizanin jî dîsa bi derewan sond dixwin.

**15.** Allah, ji bo wan ezabekî dijwar amade kiriye. Ev a ku ew dikin, çiqas xerab e.

**16.** Ewana sondên xwe ji xwe re dikin mertal û ji rêya Allah dixerifînin. Ji bo wan ezabekî riswaker heye.

**17.** Mal û ewladên wan, li dij (ezabê) Allah ji bo wan qet tu feyde nade wan. Ew ehlê agir in û wê di wir de ebedî bimînin.

**18.** Roja ku Allah hemûyan li cem hevdu divejîne, berê de çawa ku ji we re sond dixwarin wê jê (ji Allah) re jî sond bixwin û wê xwe li ser tiştekî bihesibinin. Baldar bin/Dîqat bikin! Ew, derewkar bixwe ne.

**19.** Şeytan, wan xistîye bin hakimîyeta xwe û zikra Allah bi wan daye ji bîrkirin. Evana alîgirên şeytan in. Baldar bin/Dîqat bikin! Bêguman alîgirên şeytan yên ku bi xûsranê ketine bixwe ne.

**20.** Qet tu guman tune, ew ên (sînor û qanûnên wan nas nakin û bi danîna hin sînor û qanûnên din) bi Allah û bi Rasûlê wî re dijberîyê dikin di nava wan ên zelil/kêmxistî de ne.

**21.** Allah wiha nivîsandîye: "Sond be ez ê bi ser bikevim û wê rasûlên min jî (bi ser bikevin)." Bêguman Allah, (yê xwedî hêz û quwwet) Qawîy û (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz e.

لَا تَجِدُ قَوْمًا يُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ يُوَٓادُّونَ مَنْ حَٓادَّ اللّٰهَ
وَرَسُولَهُ وَلَوْ كَانُٓوا اٰبَٓاءَهُمْ اَوْ اَبْنَٓاءَهُمْ اَوْ اِخْوَانَهُمْ اَوْ عَش۪يرَتَهُمْۜ
اُو۬لٰٓئِكَ كَتَبَ ف۪ي قُلُوبِهِمُ الْا۪يمَانَ وَاَيَّدَهُمْ بِرُوحٍ مِنْهُۜ وَيُدْخِلُهُمْ
جَنَّاتٍ تَجْر۪ي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِد۪ينَ ف۪يهَاۜ رَضِيَ اللّٰهُ عَنْهُمْ
وَرَضُوا عَنْهُۜ اُو۬لٰٓئِكَ حِزْبُ اللّٰهِۜ اَلَٓا اِنَّ حِزْبَ اللّٰهِ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٢٢﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
سَبَّحَ لِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِۚ وَهُوَ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُ ﴿١﴾
هُوَ الَّذ۪ٓي اَخْرَجَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ
مِنْ دِيَارِهِمْ لِاَوَّلِ الْحَشْرِۜ مَا ظَنَنْتُمْ اَنْ يَخْرُجُوا وَظَنُّٓوا اَنَّهُمْ
مَانِعَتُهُمْ حُصُونُهُمْ مِنَ اللّٰهِ فَاَتٰيهُمُ اللّٰهُ مِنْ حَيْثُ لَمْ يَحْتَسِبُوا
وَقَذَفَ ف۪ي قُلُوبِهِمُ الرُّعْبَ يُخْرِبُونَ بُيُوتَهُمْ بِاَيْد۪يهِمْ وَاَيْدِي
الْمُؤْمِن۪ينَ فَاعْتَبِرُوا يَٓا اُو۬لِي الْاَبْصَارِ ﴿٢﴾ وَلَوْلَٓا اَنْ كَتَبَ اللّٰهُ
عَلَيْهِمُ الْجَلَٓاءَ لَعَذَّبَهُمْ فِي الدُّنْيَاۜ وَلَهُمْ فِي الْاٰخِرَةِ عَذَابُ النَّارِ ﴿٣﴾

**22.** Qewmekî ku bi Allah û bi roja axîretê îman anîbe; tu nabînî ku ew hezkirinê didin wan kesên dijminantiya Allah û Rasûlê wî dikin, welew ku ew bavên wan an zaroyên wan an xwişk û birayên wan an eşîra wan bin jî. Evana, (ew kes in ku Allah) di qelbên wan de îman nivîsandîye û bi rûhekî piştgirîya wan kiriye. Wê wan bêxe wê cennetê ku di bin de çem diherikin û tê de ebedî dimînin. Allah ji wan qayîl bûye. Ew jî (ji Allah) qayîl bûne. Evana alîgirên Allah in. Baldar bin/Dîqat bikin! Bêguman ew ên bi ser dikevin alîgirê Allah in.



## 59. SÛREYA HAŞR

*(Sûreya Haşr, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û bîst û çar (24) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya pêncî û nehemîn e. Sûre, navê xwe ji peyva Haşr sitendîye. Haşr, tê ser maneya civandin. Sûre, bi gelemperî behsa nefîya Benî Nadr dike ku ew, qewmekî Cihû bûn û bi xerakirina peymana xwe îxanet li Rasûlullah (ass) kiribûn. Meqseda vê sûreyê rohekî wisan bi mûmînan bide qezenckirin ku; bibin xwedî îmanekî li ser yeqînê û exlaqekî serdest û şiûra alîkarî û piştevanîyekî bi manewîyateke qewîn.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Her çi tiştên li erd û esmanan hene, Allah tesbîh dikin. Ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**2.** Ew e, yê ku kafirên ji ehlêkitêb di nefîya ewil de ew ji warên wan derxistibû. We ne difikirî ku wê ew derkevin. Wan jî zen dikirin ku wê kelhên wan dê ew ji Allah biparêzin. Lê belê Allah, ji cihekî ku wan qet bîra wê nedibir ve hate wan û tirsekî bişîdet xiste qelbên wan. Xanîyên xwe bi destên xwe û bi destên mûmînan xerab dikirin. Gelî ew ên xwedî besîret, îbretê bigirin!

**3.** Eger Allah, nefiykirinê li ser wan nenivîsîba teqez wê li dinyayê (bi awayekî din) ezab li wan bikira. Ji bo wan li axîretê ezabê agir heye.

ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ شَٓاقُّوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُۚ وَمَنْ يُشَٓاقِّ اللّٰهَ فَاِنَّ اللّٰهَ شَد۪يدُ
الْعِقَابِ ﴿٤﴾ مَا قَطَعْتُمْ مِنْ ل۪ينَةٍ اَوْ تَرَكْتُمُوهَا قَٓائِمَةً عَلٰٓى اُصُولِهَا
فَبِاِذْنِ اللّٰهِ وَلِيُخْزِيَ الْفَاسِق۪ينَ ﴿٥﴾ وَمَٓا اَفَٓاءَ اللّٰهُ عَلٰى رَسُولِه۪
مِنْهُمْ فَمَٓا اَوْجَفْتُمْ عَلَيْهِ مِنْ خَيْلٍ وَلَا رِكَابٍ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ
يُسَلِّطُ رُسُلَهُ عَلٰى مَنْ يَشَٓاءُۜ وَاللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿٦﴾
مَٓا اَفَٓاءَ اللّٰهُ عَلٰى رَسُولِه۪ مِنْ اَهْلِ الْقُرٰى فَلِلّٰهِ وَلِلرَّسُولِ
وَلِذِي الْقُرْبٰى وَالْيَتَامٰى وَالْمَسَاك۪ينِ وَابْنِ السَّب۪يلِۙ
كَيْ لَا يَكُونَ دُولَةً بَيْنَ الْاَغْنِيَٓاءِ مِنْكُمْۜ وَمَٓا اٰتٰيكُمُ الرَّسُولُ
فَخُذُوهُ وَمَا نَهٰيكُمْ عَنْهُ فَانْتَهُواۚ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ اِنَّ اللّٰهَ شَد۪يدُ
الْعِقَابِۘ ﴿٧﴾ لِلْفُقَرَٓاءِ الْمُهَاجِر۪ينَ الَّذ۪ينَ اُخْرِجُوا مِنْ دِيَارِهِمْ
وَاَمْوَالِهِمْ يَبْتَغُونَ فَضْلًا مِنَ اللّٰهِ وَرِضْوَانًا وَيَنْصُرُونَ
اللّٰهَ وَرَسُولَهُۜ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الصَّادِقُونَۚ ﴿٨﴾ وَالَّذ۪ينَ تَبَوَّؤُ الدَّارَ
وَالْا۪يمَانَ مِنْ قَبْلِهِمْ يُحِبُّونَ مَنْ هَاجَرَ اِلَيْهِمْ وَلَا يَجِدُونَ
ف۪ي صُدُورِهِمْ حَاجَةً مِمَّٓا اُو۫تُوا وَيُؤْثِرُونَ عَلٰٓى اَنْفُسِهِمْ وَلَوْ كَانَ
بِهِمْ خَصَاصَةٌۜ وَمَنْ يُوقَ شُحَّ نَفْسِه۪ فَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَۚ ﴿٩﴾

**4.** Ev, ji ber vê ye ku wan li dij Allah û Rasûlê wî re serî hildane û di sefên li hemberê wan de cih girtine. Her kî ji Allah re serî rake/di sefên li dij de cih bigire bêguman Allah, yê ku cezayê wî pir dijwar e.

**5.** We ji darên xurmeyan çi birîbin an jî li ser qurmê wan li pîya hiştibin, ew (hemû) bi destûra Allah e. Û ji bo wê ye ku, fasiqan kêmxistî û riswa bike.

**6.** Ew fey a ku Allah ji wan (sitend û) da pêxemberê xwe, ji bo bi dest xistina wê (feyê), we ne hespek û ne jî deveyek ajotibû. Lê belê Allah, kî bivê dê li dijî wan pêxemberê xwe muselletê wan bike. Allah, li ser her tiştî qadir e.

(Ji wê malê xenîmetê ya ku bê şer bi dest dikeve jê re "Fey" tê gotin. Ev, wekî xenîmeta ku di şer de tê bi destxistin di navbera mucahîdan de nayê parvekirin.)

**7.** Fey ên ku Allah ji welatên (fetihkirî) ji pêxemberê xwe re (îhsan kiriye); ji bo Allah û Rasûlê wî û eqrebayên nêz û sêwîyan û feqîrên miskîn/hewcedar û rêwingên di rê de mayî ne. Bi vî awayî bila (malê xenîmetê) nebe malekî ku bitenê di destê dewlemendan de bigere (û ew ên maldar jî bi vî awayî li ser xîzanan serdestîyeke daîmî bi dest nexin). Pêxember, her çi bide ber we pê bigirin û ji bo we her çi qedexe kiribe jî hûn dev jê berdin. Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin. Qet guman tune Allah ew e ku, cezadayina wî dijwar e.

**8.** (Wekî din fey,) ji feqîrên muhaciran ku ji welatên xwe hatine derxistin û malên wan jî (ji dest wan hatîye sitendin) û ew ên li lutf û razîbûna Rabbê xwe digerin û alîkarîya Allah û rasûlê wî dikin re ye. Ha ewana yên sadiq/rast bixwe ne.

**9.** Ew (Ensar); ên ehlê îmanê ne ku berîya wan (ên muhacir) warê (Medîne) amade kiribûn, hez hîcretkirîyan dikin û ji ber tiştên ku ji wan (muhaciran) re tê dayîn çavnebarîyê nakin. Digel ku bi şîdet hewcedarin jî (birayên xwe) li ser xwe çêtir digirin. Her kî xwe ji xwedbînîya/bexîlîya nefsa xwe biparêze ha ew, yên ku gihîştine xelasîyê bixwe ne.




وَالَّذٖينَ جَٓاؤُ۫ مِنْ بَعْدِهِمْ يَقُولُونَ رَبَّنَا اغْفِرْ لَنَا وَلِاِخْوَانِنَا
الَّذٖينَ سَبَقُونَا بِالْاٖيمَانِ وَلَا تَجْعَلْ فٖى قُلُوبِنَا غِلًّا لِلَّذٖينَ
اٰمَنُوا رَبَّنَٓا اِنَّكَ رَؤُ۫فٌ رَحٖيمٌ ﴿١٠﴾ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذٖينَ نَافَقُوا
يَقُولُونَ لِاِخْوَانِهِمُ الَّذٖينَ كَفَرُوا مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ
لَئِنْ اُخْرِجْتُمْ لَنَخْرُجَنَّ مَعَكُمْ وَلَا نُطٖيعُ فٖيكُمْ اَحَدًا اَبَدًاۙ
وَاِنْ قُوتِلْتُمْ لَنَنْصُرَنَّكُمْۜ وَاللّٰهُ يَشْهَدُ اِنَّهُمْ لَكَاذِبُونَ ﴿١١﴾
لَئِنْ اُخْرِجُوا لَا يَخْرُجُونَ مَعَهُمْۚ وَلَئِنْ قُوتِلُوا لَا يَنْصُرُونَهُمْۚ
وَلَئِنْ نَصَرُوهُمْ لَيُوَلُّنَّ الْاَدْبَارَ ثُمَّ لَا يُنْصَرُونَ ﴿١٢﴾ لَاَنْتُمْ اَشَدُّ
رَهْبَةً فٖى صُدُورِهِمْ مِنَ اللّٰهِۜ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ قَوْمٌ لَا يَفْقَهُونَ ﴿١٣﴾
لَا يُقَاتِلُونَكُمْ جَمٖيعًا اِلَّا فٖى قُرًى مُحَصَّنَةٍ اَوْ مِنْ وَرَٓاءِ
جُدُرٍۜ بَاْسُهُمْ بَيْنَهُمْ شَدٖيدٌۜ تَحْسَبُهُمْ جَمٖيعًا وَقُلُوبُهُمْ
شَتّٰىۜ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ قَوْمٌ لَا يَعْقِلُونَۚ ﴿١٤﴾ كَمَثَلِ الَّذٖينَ
مِنْ قَبْلِهِمْ قَرٖيبًا ذَاقُوا وَبَالَ اَمْرِهِمْۚ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَلٖيمٌۚ ﴿١٥﴾
كَمَثَلِ الشَّيْطَانِ اِذْ قَالَ لِلْاِنْسَانِ اكْفُرْۚ فَلَمَّا كَفَرَ
قَالَ اِنّٖى بَرٖٓیءٌ مِنْكَ اِنّٖٓى اَخَافُ اللّٰهَ رَبَّ الْعَالَمٖينَ ﴿١٦﴾

**10.** Ew ên piştî wan (Muhacir û Ensarîyan) hatine wiha dibêjin: "Rabbê me! Me û birayên me yên berî me, ên îman anîne mexfîret bike û di qelbên me de ji bo mûmînan kînekê nehêle. Rabbê me! Bêguman tu, li ser evdên xwe (pir bi şefqet) Raûf û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm î.

(Bnr. 9/Tewbe, 100)

**11.** Ma qey te wan ên munafiqtîyê dikin nedît? Ji birayên xwe yên kafir ên ehlê kitêb re wiha dibêjin: "Eger hûn ji warên xwe bên derxistin, em ê jî bi we re derkevin. (Di hukmekî aleyha we de) em qet ji tu kesî re îtaet nakin. Eger bi we re bê şerkirin muheqeq em ê alîkarîya we bikin." Allah, şahidî dike ku ew derewkar in.

**12.** Sond be eger (ji warên xwe) bên derxistin, ew bi wan re dernakevin. Bi wan re bê şerkirin, alîkarîya wan nakin. Eger alîkarî bikin jî wê pişt xwe ve vegerin û birevin. Paşê alîkarî jî li wan nayê kirin.

**13.** Tirsa we ya di dilê wan de, ji tirsa Allah zêdetir e. Ev, ji ber vê ye ku ew qewmekî bê fêhm in.

**14.** Eger ew ne di bajarên parastî û pişt (sîperên) dîwaran de bin, li dij we bitevahî (serî bi serî/deqe deq) şer nakin. Şerên wan ên di navbera xwe de dijwar e.Tu wan yek (yekgirtî/bihevre) dihesibînî. Hal ev e ku qelbên wan weslewesle/parçe parçe ye. Ev, ji ber vê ye ku ew ne qewmekî aqilmend in.

**15.** (Evana,) wekî ew ên di demekê nêz berîya wan de webala (kufr û xayîntîya xwe) tam kirine (ew ê jî webala amelên xwe tam bikin). Ji wan re ezabekî biêş û jan heye.

**16.** Wekî rewşa şeytan... Wî ji însan re got: "Bibe kafir!" Dema (ku însan jî) bû kafir wiha got: "Bêguman ez ji te dûr im/berî me. Lewre ez, ji Allahê Rabbê aleman ditirsim." (Munafiqan, ji Ehlê Kitêb ên dostê wan bûn bi vî awayî xapandin û wiha gotin: "Eger hûn ji warên xwe bên derxistin em ê jî derkevin û hûn bikevin şer de em ê alîkarîya we bikin." Dema ku şer dest pê kir jî ji wan dûr ketin.)

فَكَانَ عَاقِبَتَهُمَٓا اَنَّهُمَا فِي النَّارِ خَالِدَيْنِ فٖيهَاۜ وَذٰلِكَ جَزٰٓؤُا
الظَّالِمٖينَ ﴿١٧﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا اتَّقُوا اللّٰهَ وَلْتَنْظُرْ نَفْسٌ
مَا قَدَّمَتْ لِغَدٍۚ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ اِنَّ اللّٰهَ خَبٖيرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿١٨﴾
وَلَا تَكُونُوا كَالَّذٖينَ نَسُوا اللّٰهَ فَاَنْسٰيهُمْ اَنْفُسَهُمْۜ اُو۬لٰٓئِكَ
هُمُ الْفَاسِقُونَ ﴿١٩﴾ لَا يَسْتَوٖٓي اَصْحَابُ النَّارِ وَاَصْحَابُ الْجَنَّةِۜ
اَصْحَابُ الْجَنَّةِ هُمُ الْفَٓائِزُونَ ﴿٢٠﴾ لَوْ اَنْزَلْنَا هٰذَا الْقُرْاٰنَ
عَلٰى جَبَلٍ لَرَاَيْتَهُ خَاشِعًا مُتَصَدِّعًا مِنْ خَشْيَةِ اللّٰهِۜ وَتِلْكَ الْاَمْثَالُ
نَضْرِبُهَا لِلنَّاسِ لَعَلَّهُمْ يَتَفَكَّرُونَ ﴿٢١﴾ هُوَ اللّٰهُ الَّذٖي لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۚ
عَالِمُ الْغَيْبِ وَالشَّهَادَةِۚ هُوَ الرَّحْمٰنُ الرَّحٖيمُ ﴿٢٢﴾ هُوَ اللّٰهُ
الَّذٖي لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۚ اَلْمَلِكُ الْقُدُّوسُ السَّلَامُ الْمُؤْمِنُ الْمُهَيْمِنُ
الْعَزٖيزُ الْجَبَّارُ الْمُتَكَبِّرُۜ سُبْحَانَ اللّٰهِ عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٢٣﴾
هُوَ اللّٰهُ الْخَالِقُ الْبَارِئُ الْمُصَوِّرُ لَهُ الْاَسْمَٓاءُ الْحُسْنٰىۜ يُسَبِّحُ
لَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۚ وَهُوَ الْعَزٖيزُ الْحَكٖيمُ ﴿٢٤﴾

## سُورَةُ الْمُمْتَحِنَةِ

مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ ثَلَاثَ عَشْرَةَ اٰيَةً

**17.** Bêşik aqubeta her duyan agir e û wê di wir de bêdawî bimînin. Ev, cezayê zaliman e.

**18.** Gelî ew ên îman anîne! Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin! Herkes bila binêre ka ji bo sibê çi teqdîm dike. Ji Allah bitirsin û xwe biparêzin! Bêşik Allah ji karên we agahdar e.

**19.** Hûn nebin wekî wan kesên (ji bo) ku Allah ji bîr kirine, Allah jî ew bi wan daye ji bîr kirin. Evana, yên fasiq bixwe ne.

**20.** Ehlê agir û ehlê cennetê nabin yek. Ehlê cennetê, ew ên gihîştine xelasîyê bixwe ne.

**21.** Eger me ev Qur'an, li ser çiyayekî daxistiba tu yê bidîta ku (ew çiya) ji tirsa Allah qurmiçîye û bûye perempeçe. Ji bo ku bifikirin em van mîsalan didin însanan.

**22.** Ew Allah e ku; ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. Xwedîyê agahîya xeyb û şehadetê/darîçavan e. Ew, (yê ku di nefsa xwe de xwedî merhamet) Rahmân û (yê ku rahmeta xwe li ser evdên xwe direşîne) Rahîm e.

**23.** Ew Allah e ku; ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) qet tu îlâh tune. (Xwedîyê hakimîyetê/serwerîyê û yê ku di milkê xwe de wekî daxwaza xwe teserûfê dike) El-Melîk e. (Ew ê muqeddes û ji her kêmasîyan munezzeh/berî) El-Quddûs e. (Ew ê ji hemû kêmasî û qisûran munezzeh û selametî dide evdên xwe) Es-Selam e. (Ew ê îman û ewlehîyê dide qelban) El-Mûmîn e. (Ew ê her tişt di bin kontrola wî de ye û otorîteya mutleq û hakimîyetê) El-Muheymîn e. (Ew ê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz e. (Ew ê dilşikestinan cebr dike/diborîne û her tiştî sitûxwar dike) El-Cabbar e. (Ew ê herî mezin û xwedî kibrîya) El-Mutekebbîr e. Allah, ji tiştên ku ew şirîk çêdikin berî/munezzeh e.

**24.** Ew Allah e ku; (her tiştî ji tunebûnê heyî kiriye) El-Xaliq e. (Ew ê bê qisûr û bi aheng xuliqandîye) El-Barî ye. (Ew ê li gorî daxwaza xwe sûret dide mexluqên xwe) El-Musewwîr e. Hemû esmayên/navên herî xweşik yên wî ne. Her çi tiştên li erd û esmanan hene, Allah tesbîh dikin. Ew, (yê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.

**27.** Dema ku dibînin (ezab) nêz bûye, rûyên kafiran dikeve rewşeke xerab. Hate gotin: “Ha ev, tiştê ku we dixwest (we înkar dikir û digot: ka kengê ye, ha ew) bixwe ye.”

**28.** Bibêje: “Fikrê we/Ramana we çiye? (Ka bibêjin!) Eger min û yên ligel min helak bike an jî merhametê li me bike, wê kafiran ji ezaba biêş û jan kî biparêze?”

**29.** Bibêje: “Ew Rahmân e. Me îman bi wî anîye û me xwe spartîye wî. Hûn ê di nêz de bizanibin/fêm bikin ka kî di rêşaşîyeke vikîvekirî de ye.”

**30.** Bibêje: “Fikrê we/Ramana we çiye? (Ka bibêjin!) Eger ava we bikişe binê erdê (biçike), kî dikare ku ava kanîyê ji we re bîne?”



## 68. SÛREYA QELEM

*(Sûreya Qelem, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pêncî û du (52) ayet e.)*

*Di Qur’anê de sûreya şêst û heştemîn e. Sûreya Qelem, navê xwe ji peyva qelem sitendîye. Ev peyv di ayeta yekemîn de dibore û tê ser maneya pênûs/qelem. Sûre bi herfê Nûn ku ew ji hurûfên muqattaa ye û bi qesema bi pênûs û nivîsê dest pê dike. Ji bo kêmxistina Rasûlullah (ass) li dij îdîayên muşrîkan de wesfên wî yên xweşik û exlaqê berz ku Rasûlullah (ass) li ser e tê vegotin û îdîayên wan ji kokê tên betalkirin. Bi balrakêşîya nankorîtîya kesên ku nîmet ji wan re hatîye dayîn û hin zeafîyetên exlaqî yên di nava însanan de û bi teswîrên erjeng aqûbeta ku roja qiyametê lihêvîya wan e re, hişyarî li kafiran tê kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Nûn. Bi qelemê û bi ya ku nivîsîye sond be,

**2.** Tu, bi saya nîmetê Rabbê xwe qethîyen ne mecnun/dîn î.

**3.** Bêguman (ji ber ku tu li dij tehdehîyên wan sebir dikî) ji bo te ecireke bênavber heye.

**4.** Û bêguman, tu li ser exlaqekî mezin/berz î.

**5.** Tu yê jî bibînî û ew ê jî bibînin,

**6.** Ka kîjan (rêşaş) e ji we ku li ber fitnê ketîye.

**7.** Bêguman Rabbê te, yên ji rêya

فَلَمَّا رَاَوْهُ زُلْفَةً سٖيٓـَٔتْ وُجُوهُ الَّذٖينَ كَفَرُوا وَقٖيلَ هٰذَا الَّذٖى
كُنْتُمْ بِهٖ تَدَّعُونَ ﴿٢٧﴾ قُلْ اَرَاَيْتُمْ اِنْ اَهْلَكَنِىَ اللّٰهُ وَمَنْ مَعِىَ
اَوْ رَحِمَنَاۙ فَمَنْ يُجٖيرُ الْكَافِرٖينَ مِنْ عَذَابٍ اَلٖيمٍ ﴿٢٨﴾ قُلْ هُوَ الرَّحْمٰنُ
اٰمَنَّا بِهٖ وَعَلَيْهِ تَوَكَّلْنَاۚ فَسَتَعْلَمُونَ مَنْ هُوَ فٖى ضَلَالٍ مُبٖينٍ ﴿٢٩﴾ قُلْ
اَرَاَيْتُمْ اِنْ اَصْبَحَ مَٓاؤُ۬كُمْ غَوْرًا فَمَنْ يَأْتٖيكُمْ بِمَٓاءٍ مَعٖينٍ ﴿٣٠﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
نٓ وَالْقَلَمِ وَمَا يَسْطُرُونَۙ ﴿١﴾ مَٓا اَنْتَ بِنِعْمَةِ رَبِّكَ بِمَجْنُونٍۚ ﴿٢﴾ وَاِنَّ
لَكَ لَاَجْرًا غَيْرَ مَمْنُونٍۚ ﴿٣﴾ وَاِنَّكَ لَعَلٰى خُلُقٍ عَظٖيمٍ ﴿٤﴾ فَسَتُبْصِرُ
وَيُبْصِرُونَۙ ﴿٥﴾ بِاَيِّكُمُ الْمَفْتُونُ ﴿٦﴾ اِنَّ رَبَّكَ هُوَ اَعْلَمُ بِمَنْ ضَلَّ
عَنْ سَبٖيلِهٖۖ وَهُوَ اَعْلَمُ بِالْمُهْتَدٖينَ ﴿٧﴾ فَلَا تُطِعِ الْمُكَذِّبٖينَ ﴿٨﴾ وَدُّوا
لَوْ تُدْهِنُ فَيُدْهِنُونَ ﴿٩﴾ وَلَا تُطِعْ كُلَّ حَلَّافٍ مَهٖينٍۙ ﴿١٠﴾ هَمَّازٍ مَشَّٓاءٍ بِنَمٖيمٍۙ ﴿١١﴾
مَنَّاعٍ لِلْخَيْرِ مُعْتَدٍ اَثٖيمٍۙ ﴿١٢﴾ عُتُلٍّ بَعْدَ ذٰلِكَ زَنٖيمٍۙ ﴿١٣﴾ اَنْ كَانَ
ذَا مَالٍ وَبَنٖينَۜ ﴿١٤﴾ اِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِ اٰيَاتُنَا قَالَ اَسَاطٖيرُ الْاَوَّلٖينَ ﴿١٥﴾

wî averê bûne û yên li ser hîdayetê ne jî herî çêtir dizane.

**8.** (Nexwe) îtaetî derewkeran neke.

**9.** Ew, dixwazin ku tu bi wan re bi hevahengî tevbigerî (û li dij xerifîtîya wan de helwesteke nerm nîşan bidî). (Di muqabilê vê de) ew ê jî wê hevahengdarîyê bikin (û helwesta xwe ya li dij te nerm bikin).

**10.** Tu îtaetî wî yê bêrûmet ku pirzêde sond dixwe neke.

**11.** Ew ê ku herûdaîm şermezarî (û xiybet) dikin û gotin (ên însanan) hildigirin,

**12.** Ew ê ji xêran re dibe manî û ji hedê xwe dibore û pir gunehan dike,

**13.** Ew ê tantiros-zirteboz/zordar û paşê jî nesebê wî ne diyar e,

**14.** Ji ber ku bûye xwedî mal û zarok,

**15.** Ew ê ku dema ayetên me jê re tên xwendin, dibêje, “çîrokên berê”.

سَنَسِمُهُ عَلَى الْخُرْطُومِ ﴿١٦﴾ اِنَّا بَلَوْنَاهُمْ كَمَا بَلَوْنَٓا اَصْحَابَ الْجَنَّةِ
اِذْ اَقْسَمُوا لَيَصْرِمُنَّهَا مُصْبِحِينَ ﴿١٧﴾ وَلَا يَسْتَثْنُونَ ﴿١٨﴾ فَطَافَ عَلَيْهَا طَٓائِفٌ
مِنْ رَبِّكَ وَهُمْ نَٓائِمُونَ ﴿١٩﴾ فَاَصْبَحَتْ كَالصَّرِيمِ ﴿٢٠﴾ فَتَنَادَوْا مُصْبِحِينَ ﴿٢١﴾
اَنِ اغْدُوا عَلٰى حَرْثِكُمْ اِنْ كُنْتُمْ صَارِمِينَ ﴿٢٢﴾ فَانْطَلَقُوا وَهُمْ يَتَخَافَتُونَ ﴿٢٣﴾
اَنْ لَا يَدْخُلَنَّهَا الْيَوْمَ عَلَيْكُمْ مِسْكِينٌ ﴿٢٤﴾ وَغَدَوْا عَلٰى حَرْدٍ قَادِرِينَ ﴿٢٥﴾
فَلَمَّا رَاَوْهَا قَالُٓوا اِنَّا لَضَٓالُّونَ ﴿٢٦﴾ بَلْ نَحْنُ مَحْرُومُونَ ﴿٢٧﴾ قَالَ اَوْسَطُهُمْ
اَلَمْ اَقُلْ لَكُمْ لَوْلَا تُسَبِّحُونَ ﴿٢٨﴾ قَالُوا سُبْحَانَ رَبِّنَٓا اِنَّا كُنَّا ظَالِمِينَ ﴿٢٩﴾ فَاَقْبَلَ
بَعْضُهُمْ عَلٰى بَعْضٍ يَتَلَاوَمُونَ ﴿٣٠﴾ قَالُوا يَا وَيْلَنَٓا اِنَّا كُنَّا طَاغِينَ ﴿٣١﴾ عَسٰى
رَبُّنَٓا اَنْ يُبْدِلَنَا خَيْرًا مِنْهَٓا اِنَّٓا اِلٰى رَبِّنَا رَاغِبُونَ ﴿٣٢﴾ كَذٰلِكَ الْعَذَابُ وَلَعَذَابُ
الْاٰخِرَةِ اَكْبَرُ لَوْ كَانُوا يَعْلَمُونَ ﴿٣٣﴾ اِنَّ لِلْمُتَّقِينَ عِنْدَ رَبِّهِمْ جَنَّاتِ النَّعِيمِ ﴿٣٤﴾
اَفَنَجْعَلُ الْمُسْلِمِينَ كَالْمُجْرِمِينَ ﴿٣٥﴾ مَا لَكُمْ كَيْفَ تَحْكُمُونَ ﴿٣٦﴾
اَمْ لَكُمْ كِتَابٌ فِيهِ تَدْرُسُونَ ﴿٣٧﴾ اِنَّ لَكُمْ فِيهِ لَمَا تَخَيَّرُونَ ﴿٣٨﴾ اَمْ لَكُمْ
اَيْمَانٌ عَلَيْنَا بَالِغَةٌ اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ اِنَّ لَكُمْ لَمَا تَحْكُمُونَ ﴿٣٩﴾ سَلْهُمْ
اَيُّهُمْ بِذٰلِكَ زَعِيمٌ ﴿٤٠﴾ اَمْ لَهُمْ شُرَكَٓاءُ فَلْيَأْتُوا بِشُرَكَٓائِهِمْ اِنْ كَانُوا صَادِقِينَ ﴿٤١﴾
يَوْمَ يُكْشَفُ عَنْ سَاقٍ وَيُدْعَوْنَ اِلَى السُّجُودِ فَلَا يَسْتَطِيعُونَ ﴿٤٢﴾

**16.** Em ê wî ji pozê/ji bêvila wî demxe/mohr bikin.
**17.** Bêguman çawa ku me xwedîyên bexçe ceribandibû me van (Mekkîyan) jî îmtîhan kir. Bi bîr bîne ku wan, dema sibehê ji bo (fêkîyan) biçinin sond xwaribûn.
**18.** Nedigotin “Înşaallah” (li ser veqetandina heqê xîzanan îstisnayek jî nedikirin.)
**19.** Dema ku ew radizan, ji Rabbê wan afatek (bexçeyê wan) dorpêç kir.
**20.** (Ew bexçe) wekî tarîtîya şevê ripîreş bibû.
**21.** Serê sibehê gazî hevdu kirin.
**22.** “Eger hûn ê (bi qethî) mehsûlên xwe/berhemên xwe biçinin/berhev bikin, zûtirî bi rê bikevin.”
**23.** Di navbera xwe de bi dizîka diaxivîn û derketin.
**24.** “Nebe ku îro xîzanek/feqîrek were cem we!”
**25.** Her (wekî ku) wê bikaribin xîzanan men bikin, zûtirî bi rê ketin.
**26.** Dema ku wê (şewitî û reş qelîyayî) dîtin, gotin: “Qet guman tune ku me rêya xwe şaş kiriye.”
**27.** “(Na!) Ya rast, em bêpar hatin hiştin.”
28. Ji wan yê navîn/têgihiştî got: “Qey min ji we re negot ku ‘divê hûn Allah tesbîh bikin?’ ”
**29.** Gotin: “Rabbê me! Tu ji hemû kêmasîyan munezzeh î. Bi rastî em, zalim in.”
**30.** Berê xwe dane hevdu û dest bi lomekarîya hevdu kirin.
**31.** Gotin: “Weyl li me be! Bi rastî em har/bitir bûn.”
**32.** “Hêvî heye ku Rabbê me di şûna wî de yekî bixêrtir bide me. Bêguman em, li razîbûna Rabbê xwe digerin.”
**33.** Ha ezab wisan e. Lê ezabê axîretê helbet hê mezintir e. Xwezî zanîbûna.
**34.** Qet guman tune, ji bo mutteqîyan li cem Rabbê wan cennetên Naîm hene.
**35.** Ma qet em wan ên (ji Allah re) teslîmbûyî ne bi mucrîmên/sûcdarên gunehkar re wekhev digirin?
**36.** Çi dibe ji we, hûn çawa hukim didin?
**37.** Nexwe qey kitêbeke we heye ku (hûn van agahîyên xwe) ji wê derê dixwînin?
**38.** (Ma qey di Kitêbê de) “Her tiştê ku hûn diecibînin yê we ye.” (nivîsî ye?)
**39.** An jî qey ji bo we li ser me heta roja qiyametê sond hatine dayîn ku: “Hûn çi hukim bidin ew dê yê we be?”
**40.** Ka ji wan bipirse (em binêrin), kî ji wan kefîlê van (îdîayan) e?
**41.** Nexwe şirîkên wan hene (ku van îdîayan pêk bînin)? Eger ew rast dibêjin, de bila şirîkên xwe bînin (em binêrin).
**42.** Di wê roja ku saq/çîm/paq vedibe ji bo secdê tên gazîkirin, (lê) nikarin (secde bikin).

**43.** Çavên wan (ji tirsê di rewşeke) bêhiş/xayîs de ye. Zillet ew nuxamtîye. (Hal ev e ku) ew dema bisihhet bûn ji secdê re hatin gazîkirin.

**44.** Tu, min û wî yê ku vê peyvê diderewîne bi tenê serê xwe bihêle. Em ê wan ji cihekî ku qet pê nizanin gav bi gav ber bi (ezabê ve) nêz bikin.

**45.** Ez muhlet didim wan. Bêguman kemîna min, pir qewîn e.

**46.** An jî qey tu heqekî ji wan dixwazî û heta ku ew jî ji ber wê deynê ketine bin barekî giran? (Qey ew ji ber tirsa destheqê nakevin îslâmê?)

**47.** Nexwe xeyb li cem wan e û ew bixwe dinivîsin?

**48.** Tu li ser hukmê Rabbê xwe sebir bike û nebe wekî (Yûnus pêxemberê) xwedî masî! Wî bi derd û tengezarî (ji Rabbê xwe re) dûa kiribû.




**49.** Eger ji Rabbê xwe nîmetek negihîştibûna wî, di rewşeke şermezarkirî de wê bi valahîyê ve bihata avêtin.

**50.** Rabbê wî ew hilbijart û kir ji salihan.

**51.** Ew kafir dema ku Zikir/Qur'an dibihîzin, hema mabû ku bi çavên xwe lingên te bişemitînin (û te biqulibînin). Û dibêjin: “Bêguman ew, dînek e.”

**52.** Lê ew, bitenê ji aleman re şîretek/bibîrxistinek e.

## 69. SÛREYA HAQQA

*(Sûreya Haqqa, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pêncî û du (52) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya şêst û nehemîn e. Navê sûreyê ji peyva Haqqa tê ku di herdu ayetên pêşî de dibore. Ev peyv tê ser maneya heqîqet/rast. Sûreya Haqqa, ji hêla fesahat û belaxata Qur'anê ve mînakekî ji asta herî bilind e. Helakbûna qewmên Ad û Semûd û Firewn û qewmê Lût (as) ku heqîqet derewandine tê vegotin. Wekî din behsa der heqê axîretê de hişyarîya însanan û beralîkirina bal bi îman anînê ve tê kirin.*

خَاشِعَةً اَبْصَارُهُمْ تَرْهَقُهُمْ ذِلَّةٌۜ وَقَدْ كَانُوا يُدْعَوْنَ اِلَى السُّجُودِ وَهُمْ
سَالِمُونَ ﴿٤٣﴾ فَذَرْنٖى وَمَنْ يُكَذِّبُ بِهٰذَا الْحَدٖيثِۜ سَنَسْتَدْرِجُهُمْ
مِنْ حَيْثُ لَا يَعْلَمُونَۙ ﴿٤٤﴾ وَاُمْلٖى لَهُمْۜ اِنَّ كَيْدٖى مَتٖينٌ ﴿٤٥﴾ اَمْ تَسْـَٔلُهُمْ اَجْرًا
فَهُمْ مِنْ مَغْرَمٍ مُثْقَلُونَۚ ﴿٤٦﴾ اَمْ عِنْدَهُمُ الْغَيْبُ فَهُمْ يَكْتُبُونَ ﴿٤٧﴾ فَاصْبِرْ
لِحُكْمِ رَبِّكَ وَلَا تَكُنْ كَصَاحِبِ الْحُوتِۢ اِذْ نَادٰى وَهُوَ مَكْظُومٌۜ ﴿٤٨﴾
لَوْلَٓا اَنْ تَدَارَكَهُ نِعْمَةٌ مِنْ رَبِّهٖ لَنُبِذَ بِالْعَرَٓاءِ وَهُوَ مَذْمُومٌ ﴿٤٩﴾ فَاجْتَبٰيهُ رَبُّهُ
فَجَعَلَهُ مِنَ الصَّالِحٖينَ ﴿٥٠﴾ وَاِنْ يَكَادُ الَّذٖينَ كَفَرُوا لَيُزْلِقُونَكَ بِاَبْصَارِهِمْ
لَمَّا سَمِعُوا الذِّكْرَ وَيَقُولُونَ اِنَّهُ لَمَجْنُونٌۢ ﴿٥١﴾ وَمَا هُوَ اِلَّا ذِكْرٌ لِلْعَالَمٖينَ ﴿٥٢﴾

سُورَةُ الْحَآقَّةِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ اثْنَتَانِ وَخَمْسُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
اَلْحَٓاقَّةُ ﴿١﴾ مَا الْحَٓاقَّةُ ﴿٢﴾ وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا الْحَٓاقَّةُۜ ﴿٣﴾ كَذَّبَتْ ثَمُودُ وَعَادٌ
بِالْقَارِعَةِ ﴿٤﴾ فَاَمَّا ثَمُودُ فَاُهْلِكُوا بِالطَّاغِيَةِ ﴿٥﴾ وَاَمَّا عَادٌ فَاُهْلِكُوا بِرٖيحٍ
صَرْصَرٍ عَاتِيَةٍۙ ﴿٦﴾ سَخَّرَهَا عَلَيْهِمْ سَبْعَ لَيَالٍ وَثَمَانِيَةَ اَيَّامٍۙ حُسُومًا فَتَرَى
الْقَوْمَ فٖيهَا صَرْعٰىۙ كَاَنَّهُمْ اَعْجَازُ نَخْلٍ خَاوِيَةٍۚ ﴿٧﴾ فَهَلْ تَرٰى لَهُمْ مِنْ بَاقِيَةٍ ﴿٨﴾

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Haqqa! (Qiyamet; dawîya her însanî ya ku heq kiriye tîne û pêkanîna wê heq û qethî ye.)

**2.** Çi ye ew Haqqa?

**3.** Tu yê ji ku bizanibî Haqqa çi ye?

**4.** Semûd û Ad, (ew qiyameta hejîner) Qarîa derewandin.

**5.** (Qewmê) Semûd, ji ber harîtîya/bitirtîya xwe hatin helakkirin.

**6.** Qewmê Ad jî bi firtoneyeke bivîzevîz ku her tiştî bi erdê re yeksan dike hate helakkirin.

**7.** (Allah, wê firtoneyê) heşt roj û heft şev bênavber musselletê ser wan kir. (Eger tu li wê derê bûna) te yê bidîta ku ew qewm, wekî qurmê dara xurmeya pûç û rizîyayî ketî ne.

**8.** Niha binêre ma tu şûnmayîneke ji wan dibînî?

وَجَٓاءَ فِرْعَوْنُ وَمَنْ قَبْلَهُ وَالْمُؤْتَفِكَاتُ بِالْخَاطِئَةِۚ ﴿٩﴾ فَعَصَوْا رَسُولَ
رَبِّهِمْ فَاَخَذَهُمْ اَخْذَةً رَابِيَةً ﴿١٠﴾ اِنَّا لَمَّا طَغَا الْمَٓاءُ حَمَلْنَاكُمْ فِي الْجَارِيَةِۙ ﴿١١﴾
لِنَجْعَلَهَا لَكُمْ تَذْكِرَةً وَتَعِيَهَٓا اُذُنٌ وَاعِيَةٌ ﴿١٢﴾ فَاِذَا نُفِخَ فِي الصُّورِ
نَفْخَةٌ وَاحِدَةٌۙ ﴿١٣﴾ وَحُمِلَتِ الْاَرْضُ وَالْجِبَالُ فَدُكَّتَا دَكَّةً وَاحِدَةًۙ ﴿١٤﴾
فَيَوْمَئِذٍ وَقَعَتِ الْوَاقِعَةُۙ ﴿١٥﴾ وَانْشَقَّتِ السَّمَٓاءُ فَهِيَ يَوْمَئِذٍ وَاهِيَةٌۙ ﴿١٦﴾
وَالْمَلَكُ عَلٰٓى اَرْجَٓائِهَاۜ وَيَحْمِلُ عَرْشَ رَبِّكَ فَوْقَهُمْ يَوْمَئِذٍ ثَمَانِيَةٌۜ ﴿١٧﴾
يَوْمَئِذٍ تُعْرَضُونَ لَا تَخْفٰى مِنْكُمْ خَافِيَةٌ ﴿١٨﴾ فَاَمَّا مَنْ اُو۫تِيَ
كِتَابَهُ بِيَمِينِهِ فَيَقُولُ هَٓاؤُمُ اقْرَؤُا كِتَابِيَهْۚ ﴿١٩﴾ اِنّ۪ي ظَنَنْتُ اَنّ۪ي مُلَاقٍ
حِسَابِيَهْۚ ﴿٢٠﴾ فَهُوَ فِي عِيشَةٍ رَاضِيَةٍۙ ﴿٢١﴾ فِي جَنَّةٍ عَالِيَةٍۙ ﴿٢٢﴾ قُطُوفُهَا
دَانِيَةٌ ﴿٢٣﴾ كُلُوا وَاشْرَبُوا هَن۪ٓيـًٔا بِمَٓا اَسْلَفْتُمْ فِي الْاَيَّامِ الْخَالِيَةِ ﴿٢٤﴾
وَاَمَّا مَنْ اُو۫تِيَ كِتَابَهُ بِشِمَالِهِ فَيَقُولُ يَا لَيْتَن۪ي لَمْ اُو۫تَ كِتَابِيَهْۚ ﴿٢٥﴾
وَلَمْ اَدْرِ مَا حِسَابِيَهْۚ ﴿٢٦﴾ يَا لَيْتَهَا كَانَتِ الْقَاضِيَةَۚ ﴿٢٧﴾ مَٓا اَغْنٰى عَنّ۪ي
مَالِيَهْۚ ﴿٢٨﴾ هَلَكَ عَنّ۪ي سُلْطَانِيَهْۚ ﴿٢٩﴾ خُذُوهُ فَغُلُّوهُۙ ﴿٣٠﴾ ثُمَّ الْجَح۪يمَ
صَلُّوهُۙ ﴿٣١﴾ ثُمَّ ف۪ي سِلْسِلَةٍ ذَرْعُهَا سَبْعُونَ ذِرَاعاً فَاسْلُكُوهُۜ ﴿٣٢﴾ اِنَّهُ
كَانَ لَا يُؤْمِنُ بِاللّٰهِ الْعَظ۪يمِۙ ﴿٣٣﴾ وَلَا يَحُضُّ عَلٰى طَعَامِ الْمِسْك۪ينِۜ ﴿٣٤﴾

**9.** Fîrewn û (qewmên) berîya wî û (qewmê Lût) ku hatibûn serûbinkirin, hemû xeta kirin.

**10.** Ji pêxemberê Rabbê xwe re îsyan kirin. (Allah jî) ewana bi girtineke (ku pîveka wî) hê zêdetir dibe zeft dike.

**11.** Qet tu guman tune, dema ku av (lehî, şape) rabû me hûn di keştîyê de kişandin.

**12.** Heta ku em wê ji bo we bikin şîret/bibîrxistin û guhên têgihiştî bila wê têbigîhînin (da ku pê amel bikin û rabigihînin yên di pey wan de tên).

**13.** Dema ku bi yek pifkirinek li sûrê bê pifkirin,

**14.** Dema erd û çiyan ji cihên xwe tên kişandin (paşê jî) li hev tên xistin û dibin parçe,

**15.** Ha ew roj Waqîe (qiyameta ku wê qethîyen rabe) waqî bûye.

**16.** Asîman qelişîye. Ew, wê rojê sistbûyî/dahelînî ye.

**17.** Melaîket li dora wê ne. Wê rojê heşt (melaîket) ên li ser wan de wê erşê Rabbê te hilgirin.

**18.** Wê rojê hûn li hizûra (Allah) tên derxistin. Qet tu tiştekî we veşartî namîne.

**19.** Heçî yê kitêba wî ji milê rastê ve tê dayîn, dibêje: "Va kitêba min! Bigirin û bixwînin."

**20.** "Bêguman min li ser yeqînê zanîbû ku ez ê bigihîjim hisaba xwe."

**21.** Êdî ew, di nava jiyaneke pê qayîlbûyî de ne.

**22.** Di cenneteke bilind de,

**23.** Fêkîyên wê pir nêz û berdest in.

**24.** (Ji wan re tê gotin:) "Di berdêla amelên ku we li dinyayê kiribûn, bi noşîcanî bixwin û vexwin.

**25.** Heçî yê kitêba wî ji milê çepê ve tê dayîn, dibêje: "Xwezî kitêba min nehatiba dayîn."

**26.** "(Xwezî) min bi hisabê xwe qet nizanîba."

**27.** "Xwezî (mirin) her tiştî biqedanda (vejîn û hisab nebûna)."

**28.** "Min ji malê xwe qet tu sûd newergirt."

**29.** "Hêza min/otorîteya min winda bû çû."

**30.** (Tê gotin:) "Bi wî bigirin û girê bidin."

**31.** "Paşê wî bavêjin nava cehennemê."

**32.** "Piştre jî wî li zincîreke ku dirêjahîya wî bi qasî heftê gaz e/erşin e bidin."

**33.** "Lewre wî, bi Allahê azîm îman nedianî."

**34.** "Xwarindayîna xîzanan jî teşwîq nedikir."

**35.** “Îro, li vê derê ji bo wî qet tu dostekî nêz wê tunebe.”

**36.** “Ji xwîn û kêm/zûxav/edab pê ve tu xwarina wan jî tune.”

**37.** “Wê jî bitenê ew kesên bi xeta/gunehkar dixwin.”

**38.** Nexêr! (Mijar ne wekî ku muşrîk îdîa dikin e.) Sond be bi ya ku hûn dibînin!

**39.** Û bi ya ku hûn nabînîn jî.

**40.** Qet tu guman tune (Qur'an), peyva qasidekî birûmet e.

**41.** Ew, ne peyva şair e. Hûn çiqas hindik bawerî tînin.

**42.** Ew ne peyva berbêjekî/kahînekî ye jî. Hûn çiqas hindik şîret digirin.

**43.** Ji hêla/ji alîyê (Allahê) Rabbê aleman ve hatîye daxistin.

**44.** Eger wî, li dij me hin gotin lihevbianîna,

**45.** Muheqeq me yê bi (destê) rastê/bihêz ji wî (tol/heyf) bistanda.

**46.** Piştre jî me yê dilreha wî (yê di qelbê wî de) biqetanda.

**47.** Tu kes ji we jî nikaribû (ji pêkanîna me ya van re) bibe manî/asteng.

**48.** Bêguman ew, ji bo Mutteqîyan şîretek e/bibîrxistinek e.

**49.** Qet tu guman tune em dizanin ku ji nav we yên derewkar hene.

**50.** Û qet tu guman tune ew, ji bo kafiran poşmanîyek e. (Ji ber ku îman neanîne roja qiyametê poşman dibin.)

**51.** Û bêguman ew, heq a yeqîn/qethî bixwe ye.

**52.** Di wê rewşê de tu Rabbê xwe yê mezin bi navê wî tesbîh bike.



## 70. SÛREYA MEARIC

*(Sûreya Mearic, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çil û çar (44) ayet e. )*

*Di Qur'anê de sûreya heftêyem e. Peyva Mearic, di ayeta sêyemîn de dibore û tê ser maneya derenceya bilindbûnê ya pirjimarî. Di vê sûreyê de bi gelemperî teswîrên roja qiyametê û kesên bi Qur'anê îman neanîne û ezameta Allah (ac) û rewişt û tebîeta muşrîkan û aqûbeta kesên kafir û ehwalê kesên mûmîn ku dikevin cennetên bêdawî bi raveyên kurt tê vegotin.*

فَلَيْسَ لَهُ الْيَوْمَ هٰهُنَا حَم۪يمٌۙ ﴿٣٥﴾ وَلَا طَعَامٌ اِلَّا مِنْ غِسْل۪ينٍۙ ﴿٣٦﴾
لَا يَأْكُلُهُٓ اِلَّا الْخَاطِؤُ۫نَ ﴿٣٧﴾ فَلَٓا اُقْسِمُ بِمَا تُبْصِرُونَۙ ﴿٣٨﴾ وَمَا لَا تُبْصِرُونَۙ ﴿٣٩﴾
اِنَّهُ لَقَوْلُ رَسُولٍ كَر۪يمٍۚ ﴿٤٠﴾ وَمَا هُوَ بِقَوْلِ شَاعِرٍۜ قَل۪يلاً مَا تُؤْمِنُونَۙ ﴿٤١﴾
وَلَا بِقَوْلِ كَاهِنٍۜ قَل۪يلاً مَا تَذَكَّرُونَۜ ﴿٤٢﴾ تَنْز۪يلٌ مِنْ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿٤٣﴾
وَلَوْ تَقَوَّلَ عَلَيْنَا بَعْضَ الْاَقَاو۪يلِۙ ﴿٤٤﴾ لَاَخَذْنَا مِنْهُ بِالْيَم۪ينِۙ ﴿٤٥﴾
ثُمَّ لَقَطَعْنَا مِنْهُ الْوَت۪ينَۘ ﴿٤٦﴾ فَمَا مِنْكُمْ مِنْ اَحَدٍ عَنْهُ حَاجِز۪ينَ ﴿٤٧﴾
وَاِنَّهُ لَتَذْكِرَةٌ لِلْمُتَّق۪ينَ ﴿٤٨﴾ وَاِنَّا لَنَعْلَمُ اَنَّ مِنْكُمْ مُكَذِّب۪ينَ ﴿٤٩﴾ وَاِنَّهُ لَحَسْرَةٌ
عَلَى الْكَافِر۪ينَ ﴿٥٠﴾ وَاِنَّهُ لَحَقُّ الْيَق۪ينِ ﴿٥١﴾ فَسَبِّحْ بِاسْمِ رَبِّكَ الْعَظ۪يمِ ﴿٥٢﴾

سُورَةُ الْمَعَارِجِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ أَرْبَعٌ وَاَرْبَعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

سَاَلَ سَٓائِلٌ بِعَذَابٍ وَاقِعٍۙ ﴿١﴾ لِلْكَافِر۪ينَ لَيْسَ لَهُ دَافِعٌۙ ﴿٢﴾ مِنَ اللّٰهِ ذِي الْمَعَارِجِۜ ﴿٣﴾
تَعْرُجُ الْمَلٰٓئِكَةُ وَالرُّوحُ اِلَيْهِ ف۪ي يَوْمٍ كَانَ مِقْدَارُهُ خَمْس۪ينَ اَلْفَ سَنَةٍۚ ﴿٤﴾
فَاصْبِرْ صَبْرًا جَم۪يلًا ﴿٥﴾ اِنَّهُمْ يَرَوْنَهُ بَع۪يدًاۙ ﴿٦﴾ وَنَرٰيهُ قَر۪يبًاۜ ﴿٧﴾ يَوْمَ تَكُونُ
السَّمَٓاءُ كَالْمُهْلِۙ ﴿٨﴾ وَتَكُونُ الْجِبَالُ كَالْعِهْنِۙ ﴿٩﴾ وَلَا يَسْـَٔلُ حَم۪يمٌ حَم۪يمًاۚ ﴿١٠﴾

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Daxwazkarek, ezaba ku wê pêk bê xwest.

**2.** Kesekî ku wê (ezab) a ji bo kafiran e bide alî tune.

**3.** Ew (ezab), ji Allahê xwedîyê esmanan e.

**4.** Melaîket û Rûh, di rojekê de (bi bal Allah ve) hildikişin/bilind dibin ku mudeta wê pêncî hezar sal e.

**5.** (Nexwe) bi sebireke xweşik sebir bike!

**6.** Bêguman ew, wê (ezabê) dûr dibînin.

**7.** Lê em wê nêz dibînin.

**8.** Ew roja ku asîman dibe wekî madena helandî,

**9.** Çiya ji dibin wekî hirîya rengûreng (û belavbûyî).

**10.** (Wê rojê) dostê nêz/hogir li dostê xwe napirse.

يُبَصَّرُونَهُمْ يَوَدُّ الْمُجْرِمُ لَوْ يَفْتَدٖى مِنْ عَذَابِ يَوْمِئِذٍ بِبَنٖيهِ ﴿١١﴾
وَصَاحِبَتِهٖ وَاَخٖيهِ ﴿١٢﴾ وَفَصٖيلَتِهِ الَّتٖى تُـؤْوٖيهِ ﴿١٣﴾ وَمَنْ فِى الْاَرْضِ
جَمٖيعًا ثُمَّ يُنْجٖيهِ ﴿١٤﴾ كَلَّا اِنَّهَا لَظٰى ﴿١٥﴾ نَزَّاعَةً لِلشَّوٰى ﴿١٦﴾ تَدْعُوا
مَنْ اَدْبَرَ وَتَوَلّٰى ﴿١٧﴾ وَجَمَعَ فَاَوْعٰى ﴿١٨﴾ اِنَّ الْاِنْسَانَ خُلِقَ هَلُوعًا ﴿١٩﴾
اِذَا مَسَّهُ الشَّرُّ جَزُوعًا ﴿٢٠﴾ وَاِذَا مَسَّهُ الْخَيْرُ مَنُوعًا ﴿٢١﴾ اِلَّا الْمُصَلّٖينَ ﴿٢٢﴾
اَلَّذٖينَ هُمْ عَلٰى صَلَاتِهِمْ دَائِمُونَ ﴿٢٣﴾ وَالَّذٖينَ فٖى اَمْوَالِهِمْ حَقٌّ مَعْلُومٌ ﴿٢٤﴾
لِلسَّائِلِ وَالْمَحْرُومِ ﴿٢٥﴾ وَالَّذٖينَ يُصَدِّقُونَ بِيَوْمِ الدّٖينِ ﴿٢٦﴾ وَالَّذٖينَ
هُمْ مِنْ عَذَابِ رَبِّهِمْ مُشْفِقُونَ ﴿٢٧﴾ اِنَّ عَذَابَ رَبِّهِمْ غَيْرُ مَأْمُونٍ ﴿٢٨﴾
وَالَّذٖينَ هُمْ لِفُرُوجِهِمْ حَافِظُونَ ﴿٢٩﴾ اِلَّا عَلٰٓى اَزْوَاجِهِمْ اَوْ مَا مَلَكَتْ
اَيْمَانُهُمْ فَاِنَّهُمْ غَيْرُ مَلُومٖينَ ﴿٣٠﴾ فَمَنِ ابْتَغٰى وَرَٓاءَ ذٰلِكَ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ
الْعَادُونَ ﴿٣١﴾ وَالَّذٖينَ هُمْ لِاَمَانَاتِهِمْ وَعَهْدِهِمْ رَاعُونَ ﴿٣٢﴾ وَالَّذٖينَ هُمْ
بِشَهَادَاتِهِمْ قَٓائِمُونَ ﴿٣٣﴾ وَالَّذٖينَ هُمْ عَلٰى صَلَاتِهِمْ يُحَافِظُونَ ﴿٣٤﴾
اُولٰٓئِكَ فٖى جَنَّاتٍ مُكْرَمُونَ ﴿٣٥﴾ فَمَا لِ الَّذٖينَ كَفَرُوا قِبَلَكَ
مُهْطِعٖينَ ﴿٣٦﴾ عَنِ الْيَمٖينِ وَعَنِ الشِّمَالِ عِزٖينَ ﴿٣٧﴾ اَيَطْمَعُ كُلُّ امْرِئٍ
مِنْهُمْ اَنْ يُدْخَلَ جَنَّةَ نَعٖيمٍ ﴿٣٨﴾ كَلَّا اِنَّا خَلَقْنَاهُمْ مِمَّا يَعْلَمُونَ ﴿٣٩﴾

**11.** Ew ji (hevdu re) têne nîşandan. Kesê mucrîm, ji ber ezaba wê rojê dixwaze ku zaroyên xwe yên kurîn wek fidye bide.
**12.** Jina xwe û birayê xwe,
**13.** Xwedî û eqrebayên ku ew hewandine,
**14.** Hemû tiştên li ser rûyê erdê... Paşê (dixwaze ku ev tiştên daye) wî xelas bike.
**15.** Qet/Tu car! Lewre ew, cehennem e ku bi harkî dişewite û alavên wê bi şîdet in.
**16.** Ew çermê serîyan radike û derdixe.
**17.** Gazî wî yê ku (ji îman û amelê salih) rû vegerandîye û pişta xwe daye dike.
**18.** Kesê ku (mal dicivîne û) di kûpik/kîsik/qase/hisabê banqê de (didehev/kom dike).
**19.** Bêguman însan wek helu' (bêsebir/lezgîn/bexîl) hatîye xuliqandin.
**20.** Dema ku xerabîyek bi ser de tê (hêvîya ecirekê ji Allah namîne û) feryat/fîxan dike.
**21.** Lê dema qencîyek digihîje wî qesîsî dike (û bi hinên din re parve nake).
**22.** Lê ew ên nimêj dikin ne tê de.
(Nimêja ku bi xuşû tê kirin, alîyê însan ya helu/bêsebir/lezg în/bexîl terbîye dike. (Bnr. 23/Mu'mînûn, 2))
**23.** Ew in ku di nimêjên xwe de daîmî ne.
**24.** Di malên wan de pareke diyarkirî heye.
**25.** Ji bo (xîzan) ên xwazok û mehrûm.
**26.** Ew, Roja Dîn/Axîretê tesdîq dikin.
**27.** Ew ji ber ezabê Rabbê xwe di nava tirsê/xofê de ne.
**28.** Lewre ew ji ezabê Rabbê xwe ne emîn in.
**29.** Ew îffeta xwe diparêzin.
**30.** Lê jin û carîyeyên wan ne tê de. Ji ber (ligelbûna) bi wan re nayên lomandin.
**31.** Kî jî ji vê (ligelbûna hinên ji xeynî jin û carîyeyên xwe) wêdetir bigere êdî ew, yên ji hedê xwe borî ne.
**32.** Ew (divê sparî/emanet û ehdên xwe yên di navbera xwe û Rabbê xwe de be an jî divê yên di navbera xwe û mirovan de be) miqateyê sparîyên/emanetên xwe ne.
**33.** Ew şahidîyên xwe rasterast pêk tînin.
**34.** Ew nimêjên xwe (bi baldarîya wext û şert û rukn û xuşû û sunnetên wê) diparêzin.
**35.** Ha ev in ku di cennetan de tên ezimandin.
**36.** Çi dibe ji wan kafiran ku berê xwe (bi neyartî) didin te/zîq li te dinêrin?
**37.** Di rewşa civakên ji rast û ji çepê de.
**38.** Nexwe her yek ji wan hêvî dike ku bikevin cenneta Naîm?
**39.** Qet/Tu car! Bêguman ji tiştekî ku pê dizanin me ew xuliqandin. (Her mirov ji heman tiştê hatîye xuliqandin. Ji hêla xuliqandinê ve serdestîya kesekî ji yekî din re tune. Digel îman jî neanîne, çawa dibe ku ew xwe ji mûmînan serdesttir dibînin?)

فَلَٓا اُقْسِمُ بِرَبِّ الْمَشَارِقِ وَالْمَغَارِبِ اِنَّا لَقَادِرُونَ ﴿٤٠﴾ عَلٰٓى اَنْ نُبَدِّلَ خَيْرًا مِنْهُمْ
وَمَا نَحْنُ بِمَسْبُوقِينَ ﴿٤١﴾ فَذَرْهُمْ يَخُوضُوا وَيَلْعَبُوا حَتّٰى يُلَاقُوا يَوْمَهُمُ الَّذ۪ي
يُوعَدُونَ ﴿٤٢﴾ يَوْمَ يَخْرُجُونَ مِنَ الْاَجْدَاثِ سِرَاعًا كَاَنَّهُمْ اِلٰى نُصُبٍ يُوفِضُونَ ﴿٤٣﴾
خَاشِعَةً اَبْصَارُهُمْ تَرْهَقُهُمْ ذِلَّةٌ ذٰلِكَ الْيَوْمُ الَّذ۪ي كَانُوا يُوعَدُونَ ﴿٤٤﴾

## سُورَةُ نُوحٍ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانٍ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
اِنَّٓا اَرْسَلْنَا نُوحًا اِلٰى قَوْمِه۪ٓ اَنْ اَنْذِرْ قَوْمَكَ مِنْ قَبْلِ اَنْ يَأْتِيَهُمْ عَذَابٌ
اَل۪يمٌ ﴿١﴾ قَالَ يَا قَوْمِ اِنّ۪ي لَكُمْ نَذ۪يرٌ مُب۪ينٌ ﴿٢﴾ اَنِ اعْبُدُوا اللّٰهَ وَاتَّقُوهُ
وَاَط۪يعُونِ ﴿٣﴾ يَغْفِرْ لَكُمْ مِنْ ذُنُوبِكُمْ وَيُؤَخِّرْكُمْ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّى
اِنَّ اَجَلَ اللّٰهِ اِذَا جَٓاءَ لَا يُؤَخَّرُ لَوْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٤﴾ قَالَ رَبِّ اِنّ۪ي دَعَوْتُ
قَوْم۪ي لَيْلًا وَنَهَارًا ﴿٥﴾ فَلَمْ يَزِدْهُمْ دُعَٓاء۪ٓي اِلَّا فِرَارًا ﴿٦﴾ وَاِنّ۪ي كُلَّمَا دَعَوْتُهُمْ
لِتَغْفِرَ لَهُمْ جَعَلُٓوا اَصَابِعَهُمْ ف۪ٓي اٰذَانِهِمْ وَاسْتَغْشَوْا ثِيَابَهُمْ وَاَصَرُّوا
وَاسْتَكْبَرُوا اسْتِكْبَارًا ﴿٧﴾ ثُمَّ اِنّ۪ي دَعَوْتُهُمْ جِهَارًا ﴿٨﴾ ثُمَّ اِنّ۪ٓي اَعْلَنْتُ
لَهُمْ وَاَسْرَرْتُ لَهُمْ اِسْرَارًا ﴿٩﴾ فَقُلْتُ اسْتَغْفِرُوا رَبَّكُمْ اِنَّهُ كَانَ غَفَّارًا ﴿١٠﴾

**40.** Bi Rabbê rojhilatan û rojavayan sond dixwim ku, bêguman em kara ne/muqtedîr in.

**41.** Em dikarin ku hinekan ji wan bixêrtir bînin şûna wan û biguherînin... Kes wê nikaribe bikeve pêşîya me (ji ya ku em bikin re bibin manî).

**42.** Hetanî rastî wê roja ku pê hatibûn tehdîtkirin dev ji wan berde bila noqî (batilê) bibin bileyzin (û pêmijul bibin).

**43.** Ew roja (wekî ku di pêşbazîyê de ne) beralîyê armancekî/pûtekî çikandî ne ji gorên xwe bi lez û bez derdikevin.

**44.** Çavên wan ji tirsa xayîs in û riswatî ew nixumandîye. Ew roj (qiyamet) a ku li wan hatibû weadkirin ha ev e.

## 71. SÛREYA NÛH

*(Sûreya Nûh, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û bîst û heşt (28) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya heftê û yekemîn e. Ji ber ku behsa vexwendina Nûh (as) ya li qewmê xwe dike bi navê sûreya Nûh hatîye navandin. Sûre, mijarên şandina Nûh (as) wek pêxember û dawet û teblîxa wî ya bal bi evdîtîya Allah (ac) ve û nîmetên ku Allah (ac) ji bo însan xuliqandîye û musexer kiriye û bi tofanê xeniqandina kafiran vedibêje.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Qet tu guman tune, ji bo ku wiha bibêje me Nûh ji qewmê wî re şand: "Berîya ku ezabekî biêş û jan were tu wan hişyar bike."

**2.** Gotibû: "Gelî qewmê min! Bêguman ez ji bo we hişyarkerekî vikîvekirî me."

**3.** "Îbadetê Allah bikin, jê bitirsin û xwe biparêzin. Û îtaetî min bikin."

**4.** (Li hemberî vê) bila gunehên we mexfîret bike û we hetanî demeke diyarkirî texîr bike. Bêguman dema/ecela Allah (ji we re) hat, êdî ew nayê texîrkirin. Xwezî we zanîbûna."

**5.** Gotibû: "Rabbê min! Bêşik min qewmê xwe bi şev û roj gazî (tewhîdê) kir."

**6.** "Gazîkirina min, bitenê reva wan zêdetir kir."

**7.** "Ji bo ku tu wan mexfîret bikî, min çiqas wan gazî (tewhîdê) kir, wan tilîyên xwe xistine guhê xwe û xwe bi libasên xwe nixumandin û (di kufra xwe de) israr kirin û heta karibin xwe qure kirin."

**8.** "Paşê qet guman tune ku min wan bieşkerehî jî dawet kir."

**9.** "Piştre muheqeq min (daweta xwe) îlân kir. (Carinan jî) min têrbaş bi dizîka got. (Bi wan re wek taybet yek bi yek axivîm.)"

**10.** "Min got: "Ji Rabbê xwe mexfîret daxwaz bikin. Lewre ew (yê ku gunehan pirzêde mexfîret dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xaffar e.

يُرْسِلِ السَّمَٓاءَ عَلَيْكُمْ مِدْرَارًاۙ ﴿١١﴾ وَيُمْدِدْكُمْ بِاَمْوَالٍ وَبَن۪ينَ
وَيَجْعَلْ لَكُمْ جَنَّاتٍ وَيَجْعَلْ لَكُمْ اَنْهَارًاۜ ﴿١٢﴾ مَا لَكُمْ
لَا تَرْجُونَ لِلّٰهِ وَقَارًاۚ ﴿١٣﴾ وَقَدْ خَلَقَكُمْ اَطْوَارًا ﴿١٤﴾ اَلَمْ تَرَوْا كَيْفَ
خَلَقَ اللّٰهُ سَبْعَ سَمٰوَاتٍ طِبَاقًاۙ ﴿١٥﴾ وَجَعَلَ الْقَمَرَ ف۪يهِنَّ نُورًا
وَجَعَلَ الشَّمْسَ سِرَاجًا ﴿١٦﴾ وَاللّٰهُ اَنْبَتَكُمْ مِنَ الْاَرْضِ نَبَاتًاۙ ﴿١٧﴾ ثُمَّ
يُع۪يدُكُمْ ف۪يهَا وَيُخْرِجُكُمْ اِخْرَاجًا ﴿١٨﴾ وَاللّٰهُ جَعَلَ لَكُمُ الْاَرْضَ
بِسَاطًاۙ ﴿١٩﴾ لِتَسْلُكُوا مِنْهَا سُبُلًا فِجَاجًاࣖ ﴿٢٠﴾ قَالَ نُوحٌ رَبِّ اِنَّهُمْ
عَصَوْن۪ي وَاتَّبَعُوا مَنْ لَمْ يَزِدْهُ مَالُهُ وَوَلَدُهُٓ اِلَّا خَسَارًاۚ ﴿٢١﴾ وَمَكَرُوا
مَكْرًا كُبَّارًاۚ ﴿٢٢﴾ وَقَالُوا لَا تَذَرُنَّ اٰلِهَتَكُمْ وَلَا تَذَرُنَّ وَدًّا وَلَا سُوَاعًاۙ
وَلَا يَغُوثَ وَيَعُوقَ وَنَسْرًاۚ ﴿٢٣﴾ وَقَدْ اَضَلُّوا كَث۪يرًاۚ وَلَا تَزِدِ الظَّالِم۪ينَ
اِلَّا ضَلَالًا ﴿٢٤﴾ مِمَّا خَط۪يٓـَٔاتِهِمْ اُغْرِقُوا فَاُدْخِلُوا نَارًا فَلَمْ يَجِدُوا
لَهُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَنْصَارًا ﴿٢٥﴾ وَقَالَ نُوحٌ رَبِّ لَا تَذَرْ عَلَى الْاَرْضِ
مِنَ الْكَافِر۪ينَ دَيَّارًا ﴿٢٦﴾ اِنَّكَ اِنْ تَذَرْهُمْ يُضِلُّوا عِبَادَكَ وَلَا يَلِدُٓوا
اِلَّا فَاجِرًا كَفَّارًا ﴿٢٧﴾ رَبِّ اغْفِرْ ل۪ي وَلِوَالِدَيَّ وَلِمَنْ دَخَلَ بَيْتِيَ
مُؤْمِنًا وَلِلْمُؤْمِن۪ينَ وَالْمُؤْمِنَاتِۜ وَلَا تَزِدِ الظَّالِم۪ينَ اِلَّا تَبَارًا ﴿٢٨﴾

**11.** (Di muqabilê îstîxfara we de) ji asîman bi ser we re bi zêdeyî baran dibarîne."

**12.** "Bi mal û zarokan alîkarîya we bike û ji bo we bexçeyan û çeman heyî dike."

**13.** "Ma çi li we qewimîye ku hûn qedrê Allah nagirin/ji Allah bi awayê lêhatî natirsin?

**14.** "Lê wî, hûn merhele merhele xuliqandîye. (Merheleya nutfeyê û ya embriyoyê...)"

**15.** "Ma we nedît? Allah, heft asîman çawa tebeqe tebeqe (ahengdarê hevdu) xuliqandîye."

**16.** "Heyv (di nav esmanan de) kiriye nûrek û Roj/Tav jî kiriye qendîleke ronaker."

**17.** "Allah, hûn ji erdê/ji axê (wekî) gîyayê heşîn kir."

**18.** "Paşê (dema hûn dimirin) we vedigerîne wê. Piştre we (vedijîne û ji wir) derdixîne."

**19.** "Allah ji bo we ser rûyê erdê raxistîye."

**20.** "Ku hûn bikaribin di rêyên wê yên fireh de bigerin."

**21.** Nûh gotibû: "Rabbê min! Bêguman wan, serî li ber min rakirin. Dane pey kesên wisan ku mal û zarokên wan ji xeynî zêdekirina xusranê pê ve bi kêrî qet tu tiştî nayên."

**22.** "Û kemînên herî mezin danîn."

**23.** "Û gotin: 'Nebe ku hûn dev ji îlâhên xwe berdin. Dev ji Wedd û Suwa û Yexûs û Yeûq û Nesrê berbedin.' "

(Ibnî Abbas (re) wiha gotîye: "Pût û pelatên qewmê Nûh, piştre bûn pûtên Ereban... Evana navên kesên qenc/salih yên ji qewmê Nûh bûn. Dema ku ew mirin şeytan di nav qewmê wan û di cîvata wan de pistepistê li wan kir ku pûtan biçikînin û wan bi navê bavûkalên wan binavînin. Wan jî wisa kir. Hetanî wefat kirin jî îbadet li wan pûtan nehatibû kirin. Çi dema ku ew mirin çûn û ilim jî ji holê rabû êdî însanan dest bi perestîya van kirin." (Buxarî, 4920)

Ibnî Cerîr (rh) dibêje: "Muhammed b. Qays (rh) wiha gotîye: 'Ev kesên hanê qewmekî salih bûn ku di dewra navbera Âdem (as) û Nûh (as) de jiyîbûn. Peyrevên wan kesan jî hebûn. Dema ku ew jî mirin, hevalên wan ên li dûv wan gotin: 'Em sûretên wan xêz bikin da ku dema em wan bi bîra xwe bînin bila me teşwîqê îbadetê bikin.' Paşê sûretên wan xêz kirin. Dema ku ew nifş/nesil jî wefat kir û nesleke din hat şûna wan, şeytan ket nava wan û ji wan re wiha got: 'Bavûkalên we yên berîya we perestîya van dikirin û bi saya wan baran li wan dibarîya.' Êdî piştî vêya însanan jî dest bi perestîya wan pûtan kirin." (Tefsîra Taberî))

**24.** "Muheqeq gelek kesan xerifandin. Ji zêdekirina rêşaşîtîya zaliman pê ve tiştekî wan zêde neke."

**25.** Ew ji ber xetayên/gunehên xwe (di tofanê de) xeniqîn. (Axîretê de jî) bi agir ve hatin xistin û ji bo xwe ji xeynî Allah tu alîkar nedîtin.

**26.** Nûh gotibû: "Rabbê min! Li ser rûyê erdê yek kafirekî cihwarbûyî jî nehêle."

**27.** "Eger tu wan bihêlî wê evdên te bixerifînin û ji (zarok) ên kafirê facir pê ve nawelidînin."

**28.** "Rabbê min! Min û dê û bavên min û ji mûmînan kesê ku dikeve mala min û mêr û jinên mûmîn mexfîret bike. Heçî zilimkaran jî bitenê helaka wan zêde bike."

سُورَةُ الْجِنِّ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانٍ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
قُلْ اُو۫حِيَ اِلَيَّ اَنَّهُ اسْتَمَعَ نَفَرٌ مِنَ الْجِنِّ فَقَالُٓوا اِنَّا سَمِعْنَا قُرْاٰنًا عَجَبًاۙ ﴿١﴾
يَهْد۪ٓي اِلَى الرُّشْدِ فَاٰمَنَّا بِه۪ۜ وَلَنْ نُشْرِكَ بِرَبِّنَٓا اَحَدًاۙ ﴿٢﴾ وَاَنَّهُ تَعَالٰى
جَدُّ رَبِّنَا مَا اتَّخَذَ صَاحِبَةً وَلَا وَلَدًاۙ ﴿٣﴾ وَاَنَّهُ كَانَ يَقُولُ سَف۪يهُنَا
عَلَى اللّٰهِ شَطَطًاۙ ﴿٤﴾ وَاَنَّا ظَنَنَّٓا اَنْ لَنْ تَقُولَ الْاِنْسُ وَالْجِنُّ عَلَى اللّٰهِ كَذِبًاۙ ﴿٥﴾
وَاَنَّهُ كَانَ رِجَالٌ مِنَ الْاِنْسِ يَعُوذُونَ بِرِجَالٍ مِنَ الْجِنِّ فَزَادُوهُمْ
رَهَقًاۙ ﴿٦﴾ وَاَنَّهُمْ ظَنُّوا كَمَا ظَنَنْتُمْ اَنْ لَنْ يَبْعَثَ اللّٰهُ اَحَدًاۙ ﴿٧﴾
وَاَنَّا لَمَسْنَا السَّمَٓاءَ فَوَجَدْنَاهَا مُلِئَتْ حَرَسًا شَد۪يدًا وَشُهُبًاۙ ﴿٨﴾ وَاَنَّا
كُنَّا نَقْعُدُ مِنْهَا مَقَاعِدَ لِلسَّمْعِۜ فَمَنْ يَسْتَمِعِ الْاٰنَ يَجِدْ لَهُ شِهَابًا
رَصَدًاۙ ﴿٩﴾ وَاَنَّا لَا نَدْر۪ٓي اَشَرٌّ اُر۪يدَ بِمَنْ فِي الْاَرْضِ اَمْ اَرَادَ بِهِمْ رَبُّهُمْ
رَشَدًاۙ ﴿١٠﴾ وَاَنَّا مِنَّا الصَّالِحُونَ وَمِنَّا دُونَ ذٰلِكَۜ كُنَّا طَرَٓائِقَ قِدَدًاۙ ﴿١١﴾
وَاَنَّا ظَنَنَّٓا اَنْ لَنْ نُعْجِزَ اللّٰهَ فِي الْاَرْضِ وَلَنْ نُعْجِزَهُ هَرَبًاۙ ﴿١٢﴾ وَاَنَّا لَمَّا
سَمِعْنَا الْهُدٰٓى اٰمَنَّا بِه۪ۜ فَمَنْ يُؤْمِنْ بِرَبِّه۪ فَلَا يَخَافُ بَخْسًا وَلَا رَهَقًاۙ ﴿١٣﴾

## 72. SÛREYA CIN



*(Sûreya Cin, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û bîst û heşt (28) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya heftê û duyemîn e. Ji ber ku bûyera Muslîmbûna komek ji cinan bi guhdarîya Qur'anê ya ku Rasûlullah (ass) xwendîye tê vegotin bi navê sûreya Cin hatîye navandin. Di sûreyê de hêza wehîyê ya bandorker û taybetîya wî yê hîkarîker bi eşkerehî derdikeve holê. Wehdanîyet û berzbûna Allah (ac) û dizî an eşkere her çi hebe Allah (ac) bi wan dizane û çewtî û mubalaxatîya agahî û bawerîyên der heqê cinan de û teqezîya jiyana axîretê tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bibêje: "Ji min re ev hate wehîykirin: Komek ji cinan guhdarî (ya Qur'anê) kirin û wiha gotin: 'Bêguman me, Qur'aneke (bi belexat û hinareyên/peyamên xwe) hejmetkar guhdarî kir.' "

**2.** "Ew, bi ya herî rast ve hîdayet dike. Me jî îman pê anîye. Em ji Rabbê xwe re qet tu tiştî şirîk çênakin."

**3.** "Bêşik qudret û ezameta Rabbê me pir berz/bilind e. Wî ne hevjîn û ne jî zarok girtîye."

**4.** "Bêguman ew (Îblîs) ê sefîhê me, der heqê Allah de tiştên zilim û derew in gotîye."

**5.** "(Lê) bi rastî me qet hizir nedikir ku wê însan û cin der heqê Allah de derewan bikin. (Dema ku me guhdarîya Qur'anê kir me dît/me fêm kir ku hevjîn û zarokên Allah tunin û cinan û însanan derew kirine.)"

**6.** "Qet guman tune ji însanan hin kes xwe disipartin hin kesên ji cinan, (sipartina însanan ya bi cinan) harîtîya/bitirtîya wan (cinan) zêdetir dikir."

(Ayet, bi du awayî tê manekirin. Maneya ewil ew e ku me di mealê de zikir kiriye. Ya duyem jî: "Ew cinên ku xwe dispêrin wan, bitenê harîtî û rêşaşîtîya însanan zêde kir." Cureyek ji awayê şirîk çêkirina Allah (ac) yek jî; tazîma cinan û spartina wan û serjêkirina qurbanan ji wan re û ji bo waqifbûna ilmê xeybê pêkanîna têkilîya bi wan re û bi nivîsandina nîviştan û bi wesîleya wan çêkirina sêhrê ku li ser wan bi efsûnan navê cinan dinivîsin û hêvîdarîya sûdwergirtina ji wan û parastina ji zeraran. Wekî din ji bo tarîf û cureyên şirkê û aqubeta muşrîkan bnr. 4/Nîsa, 48)

**7.** "Bêguman, wekî ku hûn jî guman dikin, wan zen dikir ku wê Allah nikaribe kesekî bivejîne."

**8.** "Muheqeq me esman dapeland lê me dît ku bi parêzvanên pir hêzdar û bi gilokên bizotê tije bû."

**9.** "Bêguman, ji bo me (berîya niha, ji bo ku em agahîyên Mele-î A'lâ) guhdarî bikin cih (ên guncaw) hebûn, em rudiniştin. Lê belê niha ew kesê ji bo guhdarîyê (xwe tê bide), di heman demê de gilokekî bizotê çavnêr/peyrav di pey xwe de dibîne."

**10.** "Ya rast ev e ku; (şandina Muhammed wek pêxember û êdî hew agahî sitendina me ya ji esman) ji bo însanan şer e, an jî Rabbê wan ji bo wan daxwaza xêrê kiriye em nizanin."

**11.** "Qet guman tune, di nav me de yên salih jî hene û yên bin wan re (ne salih in) jî hene. Em bûne firqeyên ku (noqî) bi rêyên cuda ketine."

**12.** "Wek qethî me fêm kir ku; em nikarin li ser rûyê erdê Allah aciz bihêlin. Û em jê birevin jî dîsa em nikarin wî aciz bihêlin."

**13.** "Qet guman tune, gava ku me hîdayet (Qur'an) bihîst me îman anî. Kî jî îman bi Rabbê xwe anîbe êdî ew, ji kêmkirina (xêrên xwe) jî û ji neheqîlêkirina (li xwe) jî natirse."

وَاَنَّا مِنَّا الْمُسْلِمُونَ وَمِنَّا الْقَاسِطُونَۜ فَمَنْ اَسْلَمَ فَاُو۬لٰٓئِكَ تَحَرَّوْا
رَشَدًا ﴿١٤﴾ وَاَمَّا الْقَاسِطُونَ فَكَانُوا لِجَهَنَّمَ حَطَبًاۙ ﴿١٥﴾ وَاَنْ
لَوِ اسْتَقَامُوا عَلَى الطَّرٖيقَةِ لَاَسْقَيْنَاهُمْ مَٓاءً غَدَقًاۙ ﴿١٦﴾ لِنَفْتِنَهُمْ
فٖيهِۜ وَمَنْ يُعْرِضْ عَنْ ذِكْرِ رَبِّهٖ يَسْلُكْهُ عَذَابًا صَعَدًاۙ ﴿١٧﴾ وَاَنَّ
الْمَسَاجِدَ لِلّٰهِ فَلَا تَدْعُوا مَعَ اللّٰهِ اَحَدًاۙ ﴿١٨﴾ وَاَنَّهُ لَمَّا قَامَ عَبْدُ
اللّٰهِ يَدْعُوهُ كَادُوا يَكُونُونَ عَلَيْهِ لِبَدًاۜ ﴿١٩﴾ قُلْ اِنَّمَٓا اَدْعُوا رَبّٖي
وَلَٓا اُشْرِكُ بِهٖٓ اَحَدًا ﴿٢٠﴾ قُلْ اِنّٖي لَٓا اَمْلِكُ لَكُمْ ضَرًّا وَلَا رَشَدًا ﴿٢١﴾
قُلْ اِنّٖي لَنْ يُجٖيرَنٖي مِنَ اللّٰهِ اَحَدٌ وَلَنْ اَجِدَ مِنْ دُونِهٖ
مُلْتَحَدًاۙ ﴿٢٢﴾ اِلَّا بَلَاغًا مِنَ اللّٰهِ وَرِسَالَاتِهٖۜ وَمَنْ يَعْصِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ
فَاِنَّ لَهُ نَارَ جَهَنَّمَ خَالِدٖينَ فٖيهَٓا اَبَدًاۜ ﴿٢٣﴾ حَتّٰٓى اِذَا رَاَوْا مَا يُوعَدُونَ
فَسَيَعْلَمُونَ مَنْ اَضْعَفُ نَاصِرًا وَاَقَلُّ عَدَدًا ﴿٢٤﴾ قُلْ اِنْ اَدْرٖٓي
اَقَرٖيبٌ مَا تُوعَدُونَ اَمْ يَجْعَلُ لَهُ رَبّٖٓي اَمَدًا ﴿٢٥﴾ عَالِمُ الْغَيْبِ
فَلَا يُظْهِرُ عَلٰى غَيْبِهٖٓ اَحَدًاۙ ﴿٢٦﴾ اِلَّا مَنِ ارْتَضٰى مِنْ رَسُولٍ فَاِنَّهُ
يَسْلُكُ مِنْ بَيْنِ يَدَيْهِ وَمِنْ خَلْفِهٖ رَصَدًاۙ ﴿٢٧﴾ لِيَعْلَمَ اَنْ قَدْ اَبْلَغُوا
رِسَالَاتِ رَبِّهِمْ وَاَحَاطَ بِمَا لَدَيْهِمْ وَاَحْصٰى كُلَّ شَيْءٍ عَدَدًا ﴿٢٨﴾

**14.** “Û qet guman tune, di nav me de yên ku teslîmê (Allah) bûne jî hene û yên zalim jî hene. Ew kesê teslîm bûye ew in ku, bi lêpirsînê rêya rast dîtine.”

**15.** “Lê ew ên zilimkar ji cehennemê re bûne dar/êzing.”

**16.** Eger ew, li ser rê (ya îslâmê) bibûna ehlê îstîqametê me yê aveke (baraneke) pir bida wan (da ku bi wê avê xêreke mezin bi dest bixistana).

**17.** Ji bo ceribandina/îmtîhana wan... Kî ji zikra Rabbê xwe rû vegerîne, dê wî bêxe ezabekî dijwar.

**18.** Qet guman tune, mescîd aîdê Allah in. (Di wê rewşê de), ligel Allah ji yek (îlâhekî) din re dûa nekin.

**19.** Bêguman dema ku evdê Allah (Muhammed) ji bo dûa bike radibû, hema mabû li dij wî wekî kulavê bikevin nav hev (bi hev kêlûnbibin û neyartî lê bikin).

**20.** Bibêje: “Ez enceq ji Rabbê xwe re dûa dikim û jê re qet tu tiştî şirîk çênakim.”

**21.** Bibêje: “Ez ne dikarim zererekî bidim we û ne jî ji bo we feydeyekî pêk bînim.”

**22.** Bibêje: “Bêguman, li dij Allah tu kes nikare min biparêze û ji min re ji xeynî wî sitargehekî (ku ez xwe bispêrmê) jî nabînim.

**23.** (Peywira/Wezîfeya min,) teblîxa ya ku ji Allah e û hinareyên/peyamên wî ne. (Ji ezabê wî enceq bi vê awayê bikaribim xelas bibim.) Kî jî ji Allah û rasûlê wî re serî rake/îsyan bike, ji bo wî cehennem heye ku wê tê de ebedî bimîne.”

**24.** Dema ku wê (ezab) a pê hatine tehdîtkirin dibînin, ka alîkarê kî qels e û kî bi hejmarî hê hindiktir e wê bizanibin.

**25.** Bibêje: “Ew (ezab) a ku Rabbê min ji we re wead kiriye nêz e an jî ji bo wê demeke dûr tayîn kiriye, qet nizanim?”

**26.** (Ew,) zanayê xeybê ye. Qet tu kesî muttalîyê/pêagahdarê xeyba xwe nake.

**27.** Lê ew ên ku Allah ji nav pêxemberên xwe razî bûne (û hilbijartine) ne tê de/mustesna ne. Lewre (ji bo qasidê ku muttalîyê agahîya xeybê ye) li pêşîya wî û li pişt wî de çavnêran (ku ew diparêzin) bicih kiriye.

**28.** Heta bizanibe ku wan, hinareyên/peyamên ji Rabbê xwe (bê kêmasî û parastî) teblîx kirine. (Allah,) wê (agahî) ya li cem wan dorpêç kiriye û her tiştî (yek bi yek) xistîye bin qeydê.

## 73. SÛREYA MUZZEMMIL

*(Sûreya Muzzemmil, Mekkî ye (Mekkeyê nazil bûye) û bîst (20) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya heftê û sêyemîn e. Peyva Muzzemmil, di ayeta yekemîn de dibore û tê ser maneya nuxamtî. Wek sûreya Muzzemmil hatîye navandin. Di sûreyê de serata jiyana Rasûlullah (ass) îbadetê tê vegotin. Wekî din şêweya tevgerîna Rasûlullah (ass) û aqûbeta Firewn û pêdivîya tîlaweta Qur'anê û xelata kesên muhsîn ya li cem Allah ji mijarên vê sûreyê ne.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ya ew (pêxember) ê nuxamtî/ barê (nûbûwetê) hilgirtîye!

**2.** Ji xeynî hindikî pê ve (ku tu tê de îstirahet bikî) di şevê de rabe!

**3.** Bi qasî nîvê wê an jî hinek kêm bike,

**4.** An jî hinek lê zêde bike. Qur'anê (ji bo qenc hewisînê û fikirîneke bi kûrahî) li ser tertîlê (lib û lib, giran giran) bixwîne.

**5.** Bêguman, em ê peyveke (berpirsîyarîya wê) giran bi ser te de wehîy bikin.

**6.** Qet guman tune îbadeta şevê (di alema te ya hestê de) herî bandortir û ji hêla peyvê ve jî bihêztir e.

**7.** (Şeva xwe bi îbadet biborîne.) Bêşik bi rojê ji bo te (ku tu tê de biarimî û rakevî) demeke dirêj heye.

(Ayet dibe ku bi vê awayê jî bê manekirin: "Bi rojê pir meşxulîyetên te heye.")

**8.** Navê Rabbê xwe zikir bike (dev ji her tiştî berde) û bi awayekî kâmil berê xwe bide wî.

**9.** (Ew) Rabbê rojhilat û rojava ye. Ji wî pê ve (yê ku îbadetê heq dike) tu îlâh tune. (Herwiha tu) wî wekîl bigire.

**10.** Li dij gotinên wan sebir bike. Û wan bi awayekî xweşik (bi şayana mûmîntî ya bi weqar û bi îzzet) biterikîne.

**12.** Lewre li cem me qeyd û cehenemekî har û dijwar heye.

سُورَةُ الْمُزَّمِّلِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ عِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
يَٓا اَيُّهَا الْمُزَّمِّلُۙ ﴿١﴾ قُمِ الَّيْلَ اِلَّا قَل۪يلاًۙ ﴿٢﴾ نِصْفَهُٓ اَوِ انْقُصْ مِنْهُ قَل۪يلاًۙ ﴿٣﴾
اَوْ زِدْ عَلَيْهِ وَرَتِّلِ الْقُرْاٰنَ تَرْت۪يلاًۜ ﴿٤﴾ اِنَّا سَنُلْق۪ي عَلَيْكَ قَوْلاً ثَق۪يلاًۜ ﴿٥﴾
اِنَّ نَاشِئَةَ الَّيْلِ هِيَ اَشَدُّ وَطْـٔاً وَاَقْوَمُ ق۪يلاًۜ ﴿٦﴾ اِنَّ لَكَ فِي النَّهَارِ سَبْحاً
طَو۪يلاًۜ ﴿٧﴾ وَاذْكُرِ اسْمَ رَبِّكَ وَتَبَتَّلْ اِلَيْهِ تَبْت۪يلاًۜ ﴿٨﴾ رَبُّ الْمَشْرِقِ
وَالْمَغْرِبِ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ فَاتَّخِذْهُ وَك۪يلاً ﴿٩﴾ وَاصْبِرْ عَلٰى مَا يَقُولُونَ
وَاهْجُرْهُمْ هَجْراً جَم۪يلاً ﴿١٠﴾ وَذَرْن۪ي وَالْمُكَذِّب۪ينَ اُو۫لِي النَّعْمَةِ وَمَهِّلْهُمْ
قَل۪يلاً ﴿١١﴾ اِنَّ لَدَيْنَٓا اَنْكَالاً وَجَح۪يماًۙ ﴿١٢﴾ وَطَعَاماً ذَا غُصَّةٍ وَعَذَاباً اَل۪يماً ﴿١٣﴾
يَوْمَ تَرْجُفُ الْاَرْضُ وَالْجِبَالُ وَكَانَتِ الْجِبَالُ كَث۪يباً مَه۪يلاً ﴿١٤﴾
اِنَّٓا اَرْسَلْنَٓا اِلَيْكُمْ رَسُولاً شَاهِداً عَلَيْكُمْ كَمَٓا اَرْسَلْنَٓا اِلٰى فِرْعَوْنَ
رَسُولاًۜ ﴿١٥﴾ فَعَصٰى فِرْعَوْنُ الرَّسُولَ فَاَخَذْنَاهُ اَخْذاً وَب۪يلاً ﴿١٦﴾ فَكَيْفَ
تَتَّقُونَ اِنْ كَفَرْتُمْ يَوْماً يَجْعَلُ الْوِلْدَانَ ش۪يباًۗ ﴿١٧﴾ اَلسَّمَٓاءُ مُنْفَطِرٌ بِه۪ۜ
كَانَ وَعْدُهُ مَفْعُولاً ﴿١٨﴾ اِنَّ هٰذِه۪ تَذْكِرَةٌۚ فَمَنْ شَٓاءَ اتَّخَذَ اِلٰى رَبِّه۪ سَب۪يلاً ﴿١٩﴾

**13.** Xwarineke (xerab) ku di qirikê de nabore û ezabekî biêş û jan jî (heye).

**14.** Wê rojê erd û çiya bi şîdet dihejin. Çiya, dibin wekî loda qûmê ya ku hildiweşe/li ber ba diçe.

**15.** Bêguman çawa ku me ji Fîrewn re pêxember şandibû me ji we re jî pêxemberek şand ku ew li ser we bibe şahid.

**16.** Fîrewn, ji pêxember re îsyan kir. Me jî bi zeftkirineke dijwar ew zeft kir.

**17.** Eger hûn bibin kafir, gelo ji wê roja (bi erjeng) ku pora zaroka spî dike hûn ê xwe çawa biparêzin?

**18.** Asîman (ji erjengîya wê rojê) qelişîye. Wead (a Allah) teqez bicih bûye/pêkhatîye.

**19.** Bêguman ev, bibîrxistinek/şîretek e. Êdî kî bixwaze, bi bal Rabbê xwe ve rêyek digire.

إِنَّ رَبَّكَ يَعْلَمُ اَنَّكَ تَقُومُ اَدْنٰى مِنْ ثُلُثَيِ الَّيْلِ وَنِصْفَهُ وَثُلُثَهُ وَطَٓائِفَةٌ
مِنَ الَّذِينَ مَعَكَۜ وَاللّٰهُ يُقَدِّرُ الَّيْلَ وَالنَّهَارَۜ عَلِمَ اَنْ لَنْ تُحْصُوهُ فَتَابَ
عَلَيْكُمْ فَاقْرَؤُا مَا تَيَسَّرَ مِنَ الْقُرْاٰنِۜ عَلِمَ اَنْ سَيَكُونُ مِنْكُمْ مَرْضٰىۙ
وَاٰخَرُونَ يَضْرِبُونَ فِي الْاَرْضِ يَبْتَغُونَ مِنْ فَضْلِ اللّٰهِۙ وَاٰخَرُونَ يُقَاتِلُونَ
فِي سَبِيلِ اللّٰهِۘ فَاقْرَؤُا مَا تَيَسَّرَ مِنْهُۙ وَاَقِيمُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا الزَّكٰوةَ
وَاَقْرِضُوا اللّٰهَ قَرْضًا حَسَنًاۜ وَمَا تُقَدِّمُوا لِاَنْفُسِكُمْ مِنْ خَيْرٍ تَجِدُوهُ
عِنْدَ اللّٰهِ هُوَ خَيْرًا وَاَعْظَمَ اَجْرًاۜ وَاسْتَغْفِرُوا اللّٰهَۜ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿٢٠﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

يَٓا اَيُّهَا الْمُدَّثِّرُۙ ﴿١﴾ قُمْ فَاَنْذِرْۙ ﴿٢﴾ وَرَبَّكَ فَكَبِّرْۙ ﴿٣﴾ وَثِيَابَكَ فَطَهِّرْۙ ﴿٤﴾ وَالرُّجْزَ
فَاهْجُرْۙ ﴿٥﴾ وَلَا تَمْنُنْ تَسْتَكْثِرُۙ ﴿٦﴾ وَلِرَبِّكَ فَاصْبِرْۜ ﴿٧﴾ فَاِذَا نُقِرَ فِي النَّاقُورِۙ ﴿٨﴾
فَذٰلِكَ يَوْمَئِذٍ يَوْمٌ عَسِيرٌۙ ﴿٩﴾ عَلَى الْكَافِرِينَ غَيْرُ يَسِيرٍ ﴿١٠﴾ ذَرْنِي وَمَنْ خَلَقْتُ
وَحِيدًاۙ ﴿١١﴾ وَجَعَلْتُ لَهُ مَالًا مَمْدُودًاۙ ﴿١٢﴾ وَبَنِينَ شُهُودًاۙ ﴿١٣﴾ وَمَهَّدْتُ لَهُ تَمْهِيدًاۙ ﴿١٤﴾
ثُمَّ يَطْمَعُ اَنْ اَزِيدَۙ ﴿١٥﴾ كَلَّاۜ اِنَّهُ كَانَ لِاٰيَاتِنَا عَنِيدًاۜ ﴿١٦﴾ سَاُرْهِقُهُ صَعُودًاۜ ﴿١٧﴾

**20.** Bêguman Rabbê te dizane ku tu û hinek mûmînên ligel te, di sêyeka şevê nêzî du paran de, di nîvê wê de û di sêyeka wê de (ji bo nimêjê) radibin. Yê ku şev û rojê teqdîr dike Allah e. Wî zanîye ku hûn nikarin (bi dirêjahîya şevê nimêj) bikin. (Li ser vê) tobeyên we qebûl kir. Ji Quranê ya ku ji we re hêsane bixwînin. Wî zanîye ku dê ji nav we yên nexweş bikevin çêbin û yên din jî dê li ser rûyê erdê li lutfa Allah digerin û hinekî din jî dê di rêya Allah de şer bikin. (Herwiha) Ji Quranê ya ku ji we re hêsane bixwînin. Nimêja xwe rasterast bikin û zekâtê bidin û qerzê hesen/deynekî xweşik bidin Allah. We ji bo xwe wek xêr her çi teqdîm kiribe hûn ê wê li cem Allah herî bixêrtir û wek xelatekî mezintir bibînin. Lewre Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (li ser evdên xwe pir bi merhamet) Rahîm e.



## 74. SÛREYA MUDDESSIR

*(Sûreya Muddessir, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pêncî û şeş (56) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya heftê û çaremîn e. Peyva Muddessir, di ayeta ewil de dibore û tê ser maneya di bin libasan de pêçayî/nuxamtî. Ji ber vê yekê wek sûreya Muddessir hatîye navandin. Ev sûre usûla dawetê û taybetîyên kesên dawetvan vedibêje. Ji dawetvanan re di rêbaza dawetê de rênîşandar û rehber e. Mijarên hişyarkirina însanan û parastina wan a ji xerabîyan û rizgarkirina ji cehennemê û hêj ku fersend heye ragihandina wan a bal bi rêya rast ve tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ya ew (pêxember) ê nuxamtî/di bin libasan de pêçayî!
**2.** Rabe û hişyar bike!
**3.** Û Rabbê xwe tekbîr /berz bike!
**4.** Cilê xwe paqij bigire.
**5.** Pîsîtîyê (pûtan û şirkê û muşrîkan) biterikîne.
**6.** Qencîya ku tu dikî bila ne ji bo bi dest xistina hê zêdetir be.
**7.** Ji bo Rabbê xwe sebir bike.
**8.** Dema ku li sûrê tê pifkirin,
**9.** Ew roj, (bi rastî) rojeke dijwar e.
**10.** (Ew roj) ji bo kafiran qet ne hêsan e.
**11.** Tu min bi wî (kes) ê ku min ew bi tenê xuliqandîye, ji hev re bihêle.
**12.** Min pirzêde mal da wî.
**13.** Zarokên ku (herûdaîm) ligel wî ne.
**14.** Nîmet û îmkanên berfireh.
**15.** Paşê jî ew, (dayîna) ya herî zêdetir hêvî dike.
**16.** Qet/Tu car! Lewre ew, li dij ayetên me rikdar e.
**17.** Ez ê berê wî bidim bi hevrazekî (ezabekî dijwar ku tehemûla wê zor û) herî asê ve.

اِنَّهُ فَكَّرَ وَقَدَّرَۙ (١٨) فَقُتِلَ كَيْفَ قَدَّرَۙ (١٩) ثُمَّ قُتِلَ كَيْفَ قَدَّرَۙ (٢٠)
ثُمَّ نَظَرَۙ (٢١) ثُمَّ عَبَسَ وَبَسَرَۙ (٢٢) ثُمَّ اَدْبَرَ وَاسْتَكْبَرَۙ (٢٣) فَقَالَ اِنْ هٰذَٓا
اِلَّا سِحْرٌ يُؤْثَرُۙ (٢٤) اِنْ هٰذَٓا اِلَّا قَوْلُ الْبَشَرِۜ (٢٥) سَاُصْلٖيهِ سَقَرَ (٢٦)
وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا سَقَرُۜ (٢٧) لَا تُبْقٖي وَلَا تَذَرُۚ (٢٨) لَوَّاحَةٌ لِلْبَشَرِۚ (٢٩) عَلَيْهَا
تِسْعَةَ عَشَرَۜ (٣٠) وَمَا جَعَلْنَٓا اَصْحَابَ النَّارِ اِلَّا مَلٰٓئِكَةًۖ وَمَا جَعَلْنَا عِدَّتَهُمْ
اِلَّا فِتْنَةً لِلَّذٖينَ كَفَرُواۙ لِيَسْتَيْقِنَ الَّذٖينَ اُو۫تُوا الْكِتَابَ وَيَزْدَادَ الَّذٖينَ
اٰمَنُٓوا اٖيمَانًا وَلَا يَرْتَابَ الَّذٖينَ اُو۫تُوا الْكِتَابَ وَالْمُؤْمِنُونَۙ وَلِيَقُولَ
الَّذٖينَ فٖي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ وَالْكَافِرُونَ مَاذَٓا اَرَادَ اللّٰهُ بِهٰذَا مَثَلًاۜ كَذٰلِكَ
يُضِلُّ اللّٰهُ مَنْ يَشَٓاءُ وَيَهْدٖي مَنْ يَشَٓاءُۜ وَمَا يَعْلَمُ جُنُودَ رَبِّكَ اِلَّا هُوَۜ وَمَا هِيَ
اِلَّا ذِكْرٰى لِلْبَشَرِ۟ (٣١) كَلَّا وَالْقَمَرِۙ (٣٢) وَالَّيْلِ اِذْ اَدْبَرَۙ (٣٣) وَالصُّبْحِ اِذَٓا اَسْفَرَۙ (٣٤)
اِنَّهَا لَاِحْدَى الْكُبَرِۙ (٣٥) نَذٖيرًا لِلْبَشَرِۙ (٣٦) لِمَنْ شَٓاءَ مِنْكُمْ اَنْ يَتَقَدَّمَ
اَوْ يَتَاَخَّرَۜ (٣٧) كُلُّ نَفْسٍ بِمَا كَسَبَتْ رَهٖينَةٌۙ (٣٨) اِلَّٓا اَصْحَابَ الْيَمٖينِۜ (٣٩)
فٖي جَنَّاتٍۜ يَتَسَٓاءَلُونَۙ (٤٠) عَنِ الْمُجْرِمٖينَۙ (٤١) مَا سَلَكَكُمْ فٖي سَقَرَ (٤٢)
قَالُوا لَمْ نَكُ مِنَ الْمُصَلّٖينَۙ (٤٣) وَلَمْ نَكُ نُطْعِمُ الْمِسْكٖينَۙ (٤٤) وَكُنَّا نَخُوضُ
مَعَ الْخَٓائِضٖينَۙ (٤٥) وَكُنَّا نُكَذِّبُ بِيَوْمِ الدّٖينِۙ (٤٦) حَتّٰٓى اَتٰينَا الْيَقٖينُۜ (٤٧)

**18.** Lewre ew fikirî û pîva.
**19.** Xezeb lê bibe, çawa pîva û da serhev!
**20.** Carekî din xezeb lê bibe, (ev) çi pîvan û serhevdan e!
**21.** Paşê meze kir.
**22.** Paşê mirûzkirî mehdê xwe tirş kir.
**23.** Paşê pişta xwe vegerand û quretî kir.
**24.** Û got: "Ev ji sêhreke (ji sêhrbazan) hatîye neqilkirin pê ve ne tiştekî din e."
**25.** "Ev, bitenê peyva beşerekî ye."
**26.** Ez ê wî bavêjim seqer ê/cehennem ê.
**27.** Ka tu yê ji ku bizanibî ku seqer çi ye?
**28.** (Wisan dişewitîne ku) ne tiştekî li paş dihêle û ne jî diterikîne.
**29.** Çerm diqelîne (û diguherîne).
**30.** Li ser wê nozdeh (melaîket) hene.
**31.** Me ji melaîketan pê ve tu kesî nekiriye muhafizên cehennemê. Me jimara wan, ji bo kafiran kiriye fitneyek. Heta ku ehlê kitêb li ser yeqînê îman bînin û îmana mûmînan zêdetir bibe û ew ên ehlê kitêb û kesên mûmîn nekevin gumanê. (Û ji bo) ew di qelbên wan de nexweşî hene wiha bibêjin: "Bi vê mînakê meqseda Allah çi bû/xwest ku çi bêje?" Ha Allah, kî bixwaze wî dixerifîne û kî jî bixwaze wî digihîne hîdayetê. Ji wî pê ve tu kes bi artêşên/bi ordîyên Rabbê te nizane. Ew, ji bo însanan enceq şîretek e.
**32.** Qet/Tu car! Sond bi heyvê,
**33.** Dema ku vedigere bi şevê,
**34.** Dema ku ronahî dike bi sibehê.
**35.** Qet guman tune ku ew (seqer, cezayekî) herî mezin e.
**36.** Ji bo însanan hişyarker e.
**37.** Ji bo kesên ji we ku dixwaze bi pêş bikeve an jî li paş bimîne.
**38.** Her nefs, di gerewa (amel) ên bi dest xistîye de rehîn e. (Aqûbeta wî bi amelên wî diyar dibe.)
**39.** Eshabu'l Yemîn (yên ku defterên wan ên amelê ji milê rastê ve tên dayîn) ne tê de.
**40.** Ew di cennetan de ne. Ji hevdu dipirsin.
**41.** (Rewşa) mucrîman.
**42.** (Dibêjin:) "Çi tiştî hûn bi seqerê/bi cehennemê ve kaş kir?"
**43.** Dibêjin: "Em ne ji nimêjkeran bûn."
**44.** "Me kesên miskîn/xîzanên hewcedar têr nedikir."
**45.** Em jî ligel wan ên (noqî batil û şahîyê) bûne re, noqî batilê dibûn û diçûn."
**46.** "Me roja dîn diderewand."
**47.** "Heta yeqîn (mirin) gihîşte me (wiha dewam kir)."

فَمَا تَنْفَعُهُمْ شَفَاعَةُ الشَّافِع۪ينَۜ ﴿٤٨﴾ فَمَا لَهُمْ عَنِ التَّذْكِرَةِ مُعْرِض۪ينَۙ ﴿٤٩﴾ كَاَنَّهُمْ
حُمُرٌ مُسْتَنْفِرَةٌۙ ﴿٥٠﴾ فَرَّتْ مِنْ قَسْوَرَةٍۜ ﴿٥١﴾ بَلْ يُر۪يدُ كُلُّ امْرِئٍ مِنْهُمْ اَنْ يُؤْتٰى
صُحُفًا مُنَشَّرَةًۙ ﴿٥٢﴾ كَلَّاۜ بَلْ لَا يَخَافُونَ الْاٰخِرَةَۜ ﴿٥٣﴾ كَلَّٓا اِنَّهُ تَذْكِرَةٌۚ ﴿٥٤﴾ فَمَنْ شَٓاءَ
ذَكَرَهُۜ ﴿٥٥﴾ وَمَا يَذْكُرُونَ اِلَّٓا اَنْ يَشَٓاءَ اللّٰهُۜ هُوَ اَهْلُ التَّقْوٰى وَاَهْلُ الْمَغْفِرَةِ ﴿٥٦﴾

سُورَةُ الْقِيٰمَةِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ أَرْبَعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

لَٓا اُقْسِمُ بِيَوْمِ الْقِيٰمَةِۙ ﴿١﴾ وَلَٓا اُقْسِمُ بِالنَّفْسِ اللَّوَّامَةِ ﴿٢﴾ اَيَحْسَبُ
الْاِنْسَانُ اَلَّنْ نَجْمَعَ عِظَامَهُۜ ﴿٣﴾ بَلٰى قَادِر۪ينَ عَلٰٓى اَنْ نُسَوِّيَ بَنَانَهُ ﴿٤﴾
بَلْ يُر۪يدُ الْاِنْسَانُ لِيَفْجُرَ اَمَامَهُۚ ﴿٥﴾ يَسْـَٔلُ اَيَّانَ يَوْمُ الْقِيٰمَةِۜ ﴿٦﴾ فَاِذَا بَرِقَ
الْبَصَرُۙ ﴿٧﴾ وَخَسَفَ الْقَمَرُۙ ﴿٨﴾ وَجُمِعَ الشَّمْسُ وَالْقَمَرُۙ ﴿٩﴾ يَقُولُ
الْاِنْسَانُ يَوْمَئِذٍ اَيْنَ الْمَفَرُّۚ ﴿١٠﴾ كَلَّا لَا وَزَرَۜ ﴿١١﴾ اِلٰى رَبِّكَ يَوْمَئِذٍ الْمُسْتَقَرُّۜ ﴿١٢﴾
يُنَبَّؤُا الْاِنْسَانُ يَوْمَئِذٍ بِمَا قَدَّمَ وَاَخَّرَۜ ﴿١٣﴾ بَلِ الْاِنْسَانُ عَلٰى نَفْسِه۪
بَص۪يرَةٌۙ ﴿١٤﴾ وَلَوْ اَلْقٰى مَعَاذ۪يرَهُۜ ﴿١٥﴾ لَا تُحَرِّكْ بِه۪ لِسَانَكَ لِتَعْجَلَ بِه۪ۜ ﴿١٦﴾
اِنَّ عَلَيْنَا جَمْعَهُ وَقُرْاٰنَهُۚ ﴿١٧﴾ فَاِذَا قَرَاْنَاهُ فَاتَّبِعْ قُرْاٰنَهُۚ ﴿١٨﴾ ثُمَّ اِنَّ عَلَيْنَا بَيَانَهُۜ ﴿١٩﴾

**48.** Êdî şefaeta şefaetvanan feydeyek nade wan.
**49.** Ma çi bûye ji wan ku ji şîretê rû vedigerînin?
**50.** Tu dibêjî qey ew kerê kovî yên bizdonek in.
**51.** (Bi tirs) ji şêr direvin.
**52.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî her yekî ji wan, dixwazin ku suhûfên/rûpelên vekirî (weke Kitêba ku ji pêxember re daxistî ye) jê re jî bê dayîn.
**53.** Qet/Tu car! Berevajî ew, ji axîretê natirsin.
**54.** Qet/Tu car! Qet tu guman tune ku ew, şîretek e.
**55.** Kî bixwaze wê jê şîret bigire.
**56.** Heta Allah daxwaz neke şîret nagirin. Ew, ehlê teqwayê (ya layiqê tirsa jê û xwe jê parastinê) û ehlê mexfîretê (ya herî zêde layîqê bexişandina Mutteqîyan) e.

## 75. SÛREYA QIYAMET

*(Sûreya Qiyamet, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çil (40) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya heftê û pêncemîn e. Navê sûreyê ji peyva Qiyamet tê ku ev peyv tê ser maneya vejîna piştî mirinê. Di sûreyê de bi gelemperî behsa roja qiyametê û piştî mirinê ji nû ve vejîna însanan û mirov li jiyana dinyayê de ne serberdayî ne û aqûbeta gunehkaran ya li qiyametê tê kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*




**1.** Bi roja qiyametê sond dixwim.
**2.** Bi wê nefsa pirzêde lomekar jî sond dixwim.
**3.** Nexwe însan, zen dike ku em ê nikaribin hestîyên wî li hevdu bicivînin?
**4.** Erê! Em li ser sererastkirina serê tilîyên wî jî qadir in.
**5.** (Nexêr, ne wisan e!) Ya rast însan, di (wan rojên) pêşîya xwe de dixwaze ku (noqî gunehan bibe û bi paşdayîna tobeyê) fucûrê/sefîhtîyê bike.
**6.** Dipirsin, dibêjin: "Qiyamet kengê ye?"
**7.** Dema ku çav diqemişe,
**8.** Û dema hîv tarî dibe,
**9.** Û dema ku roj û hîv li cem hev tên civandin.
**10.** Wê rojê însan wiha dibêje: "Rev bi ku ve ye?"
**11.** Qet/Tu car! Cihekî (revê û) sitargehê tune.
**12.** Wê rojê cihê seknê/warê vegerê hizûra Rabbê te ye.
**13.** Ew roj însan ji ya ku teqdîm kiriye û ji ya ku bi paş ve xistîye (nekiriye) tê agahdar kirin.
**14.** (Nexêr!) Berevajî însan, li ser nefsa xwe xwedî besîret e. (Ew, xwe herî çêtir nas dike.)
**15.** Ew hincetên xwe bîne jî/çi hebe bêje jî.
**16.** Ji bo lezandina (fêmkirin û ji ber kirina) wê, zimanê xwe pê nelevîne.
**17.** Bêguman civandina wê (ya di qelbê te de) û xwendina wê li ser me ye.
**18.** Dema ku em wê dixwînin tu li xwendina wê bişopîne/guhdarî bike.
**19.** Paşê bêguman, beyana wê jî karê me ye.

**20.** Qet/Tu car! Berevajî hûn, hez ya pêşîn (jiyana dinyayê) dikin.
**21.** Hûn dev ji axîretê berdidin.
**22.** Ew roj (hinek) rû hene ku diberiqin.
**23.** Li Rabbê xwe dinêrin.
**24.** (Hinek) rû jî mirûzî ne.
**25.** Ew dizane ku wê (ezabekî) pişta wî bişkîne dê lê bê kirin.
**26.** Qet/Tu car! (Êdî dev ji kufr û inyadê berdin!) Gava rûh bigihîje hestîya gewrîyê.
**27.** Dema tê gotin: "Kes heye ku (nexweşîna mirinê) tedawî/sax bike?"
**28.** Êdî dizane ku ev veqetaneke (qethî) ye.
**29.** Dema ku (ji tirsan) pîyên wî li hev difetilin/li hev digerin.
**30.** Ew roj wê (însan) bi bal Rabbê te ve bêne ajotin.
**31.** Ne rastand û ne jî nimêj kir.
**32.** Lê belê derewand û pişta xwe lê vegerand.
**33.** Paşê bi quretî çû cem malbata xwe.
**34.** Xerabîya ku tu lê mustehaq î.
**35.** Tu ya hêj ji vê jî xerabtir heq dikî.
**36.** Nexwe însan zen kir ku wê (bê emirkirî û bê nehiykirî û bê tabîbûna şerîetekî) serberdayî bimîne?
**37.** Ma ew, ne dilopek ji ava menîyê ya ku dihat rêtin/rijandin bû?
**38.** Paşê (ma qey ew nebû) alaq (embriyo/goştpare? Allah) ew xuliqand û kir xwedî sûret.
**39.** Ji wî du sinifên ku nêr û mê ne xuliqand.
**40.** Ma hêza wî (yê van hemûyan dike) nagihîje ku mirîyan bivejîne?

## 76. SÛREYA ÎNSAN

*(Sûreya Însan, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sî û yek (31) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya heftê û şeşemîn e. Ji ber ku behsa xuliqandina însan dike bi navê sûreya Însan hatîye navandin. Sûre, însanan bal bi têgihiştina hikmetên xuliqandina xwe bixwe û mezharîyeta nîmetan û naskirina Allah (ac) û şikirandina dayînên wî û xweparastina ji ezaba wî û şertên bi dest xistina nîmetên bi rûmet yên li axîretê vedixwîne.*

كَلَّا بَلْ تُحِبُّونَ الْعَاجِلَةَ ﴿٢٠﴾ وَتَذَرُونَ الْاٰخِرَةَ ﴿٢١﴾ وُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ نَاضِرَةٌ ﴿٢٢﴾
اِلٰى رَبِّهَا نَاظِرَةٌ ﴿٢٣﴾ وَوُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ بَاسِرَةٌ ﴿٢٤﴾ تَظُنُّ اَنْ يُفْعَلَ بِهَا فَاقِرَةٌ ﴿٢٥﴾
كَلَّا اِذَا بَلَغَتِ التَّرَاقِيَ ﴿٢٦﴾ وَقِيلَ مَنْ رَاقٍ ﴿٢٧﴾ وَظَنَّ اَنَّهُ الْفِرَاقُ ﴿٢٨﴾
وَالْتَفَّتِ السَّاقُ بِالسَّاقِ ﴿٢٩﴾ اِلٰى رَبِّكَ يَوْمَئِذٍ الْمَسَاقُ ﴿٣٠﴾ فَلَا صَدَّقَ
وَلَا صَلّٰى ﴿٣١﴾ وَلٰكِنْ كَذَّبَ وَتَوَلّٰى ﴿٣٢﴾ ثُمَّ ذَهَبَ اِلٰٓى اَهْلِهِ يَتَمَطّٰى ﴿٣٣﴾
اَوْلٰى لَكَ فَاَوْلٰى ﴿٣٤﴾ ثُمَّ اَوْلٰى لَكَ فَاَوْلٰى ﴿٣٥﴾ اَيَحْسَبُ الْاِنْسَانُ اَنْ يُتْرَكَ سُدًى ﴿٣٦﴾
اَلَمْ يَكُ نُطْفَةً مِنْ مَنِيٍّ يُمْنٰى ﴿٣٧﴾ ثُمَّ كَانَ عَلَقَةً فَخَلَقَ فَسَوّٰى ﴿٣٨﴾ فَجَعَلَ مِنْهُ
الزَّوْجَيْنِ الذَّكَرَ وَالْاُنْثٰى ﴿٣٩﴾ اَلَيْسَ ذٰلِكَ بِقَادِرٍ عَلٰٓى اَنْ يُحْيِيَ الْمَوْتٰى ﴿٤٠﴾

سُورَةُ الْإِنْسَانِ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ اِحْدٰى وَثَلَاثُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
هَلْ اَتٰى عَلَى الْاِنْسَانِ حِينٌ مِنَ الدَّهْرِ لَمْ يَكُنْ شَيْـًٔا مَذْكُورًا ﴿١﴾
اِنَّا خَلَقْنَا الْاِنْسَانَ مِنْ نُطْفَةٍ اَمْشَاجٍ نَبْتَلِيهِ فَجَعَلْنَاهُ سَمِيعًا بَصِيرًا ﴿٢﴾
اِنَّا هَدَيْنَاهُ السَّبِيلَ اِمَّا شَاكِرًا وَاِمَّا كَفُورًا ﴿٣﴾ اِنَّٓا اَعْتَدْنَا لِلْكَافِرِينَ سَلَاسِلَا
وَاَغْلَالًا وَسَعِيرًا ﴿٤﴾ اِنَّ الْاَبْرَارَ يَشْرَبُونَ مِنْ كَاْسٍ كَانَ مِزَاجُهَا كَافُورًا ﴿٥﴾

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Di ser însan re, demekî wisan dirêj derbas bû ku; ew (di vê demê de) ne tiştekî hêjayê bibîrxistinê/zikirkirinê bû.
(Ayet, bi însan dide bibîrxistin ku ew di eslê xwe de çi bû û ji ku hatîye. Tiştekî ku di wextekî de tu kes ew bi bîr nedixist û tune bû, bi xuliqandina Allah (ac) ew însanê ku hebûn dît û heyî bû, çawa dibe ku ji Rabbê xwe re şirîk çêdike û vê heqîqetê înkar dike ku ew (Allah) mirîyan divejîne!)
**2.** Bêguman me însan, ji aveke tevlîhevbûyî (ya jin û mêr) xuliqand. Em wî diceribînin/îmtîhan dikin. (Ji ber vê jî) me ew kir heyînekî bihîstkar û bînende.
**3.** Qet guman tune, me rê nîşanî wî da. An dibe (mûmînekî) şukirdar an jî dibe (kafirekî) nankor.
**4.** Qet guman tune me, ji bo kafiran zincîr (ên ku di stûyê wan de borandî ne) û destbendên/kelepçeyên (li destên wan tên girêdan) û agirekî ku alavên bi erjeng direşîne amade kiriye.
**5.** Bi rastî ew ên Ebrar (pirzêde qencî dikin,) ji qedehekî (bêhnxweş û hênikker) ku têkelê wê kafûr e vedixwin.

عَيْنًا يَشْرَبُ بِهَا عِبَادُ اللّٰهِ يُفَجِّرُونَهَا تَفْج۪يرًا ﴿٦﴾ يُوفُونَ بِالنَّذْرِ وَيَخَافُونَ
يَوْمًا كَانَ شَرُّهُ مُسْتَط۪يرًا ﴿٧﴾ وَيُطْعِمُونَ الطَّعَامَ عَلٰى حُبِّه۪ مِسْك۪ينًا
وَيَت۪يمًا وَاَس۪يرًا ﴿٨﴾ اِنَّمَا نُطْعِمُكُمْ لِوَجْهِ اللّٰهِ لَا نُر۪يدُ مِنْكُمْ جَزَٓاءً
وَلَا شُكُورًا ﴿٩﴾ اِنَّا نَخَافُ مِنْ رَبِّنَا يَوْمًا عَبُوسًا قَمْطَر۪يرًا ﴿١٠﴾ فَوَقٰيهُمُ
اللّٰهُ شَرَّ ذٰلِكَ الْيَوْمِ وَلَقّٰيهُمْ نَضْرَةً وَسُرُورًاۚ ﴿١١﴾ وَجَزٰيهُمْ بِمَا صَبَرُوا
جَنَّةً وَحَر۪يرًاۙ ﴿١٢﴾ مُتَّكِـ۪ٔينَ ف۪يهَا عَلَى الْاَرَٓائِكِۚ لَا يَرَوْنَ ف۪يهَا شَمْسًا
وَلَا زَمْهَر۪يرًاۚ ﴿١٣﴾ وَدَانِيَةً عَلَيْهِمْ ظِلَالُهَا وَذُلِّلَتْ قُطُوفُهَا تَذْل۪يلًا ﴿١٤﴾
وَيُطَافُ عَلَيْهِمْ بِاٰنِيَةٍ مِنْ فِضَّةٍ وَاَكْوَابٍ كَانَتْ قَوَار۪يرَاۙ ﴿١٥﴾ قَوَار۪يرَ
مِنْ فِضَّةٍ قَدَّرُوهَا تَقْد۪يرًا ﴿١٦﴾ وَيُسْقَوْنَ ف۪يهَا كَاْسًا كَانَ مِزَاجُهَا زَنْجَب۪يلًاۚ ﴿١٧﴾
عَيْنًا ف۪يهَا تُسَمّٰى سَلْسَب۪يلًا ﴿١٨﴾ وَيَطُوفُ عَلَيْهِمْ وِلْدَانٌ مُخَلَّدُونَۚ
اِذَا رَاَيْتَهُمْ حَسِبْتَهُمْ لُؤْلُؤًا مَنْثُورًا ﴿١٩﴾ وَاِذَا رَاَيْتَ ثَمَّ رَاَيْتَ نَع۪يمًا وَمُلْكًا
كَب۪يرًا ﴿٢٠﴾ عَالِيَهُمْ ثِيَابُ سُنْدُسٍ خُضْرٌ وَاِسْتَبْرَقٌۘ وَحُلُّٓوا اَسَاوِرَ مِنْ فِضَّةٍۚ
وَسَقٰيهُمْ رَبُّهُمْ شَرَابًا طَهُورًا ﴿٢١﴾ اِنَّ هٰذَا كَانَ لَكُمْ جَزَٓاءً وَكَانَ سَعْيُكُمْ
مَشْكُورًا ﴿٢٢﴾ اِنَّا نَحْنُ نَزَّلْنَا عَلَيْكَ الْقُرْاٰنَ تَنْز۪يلًاۚ ﴿٢٣﴾ فَاصْبِرْ لِحُكْمِ
رَبِّكَ وَلَا تُطِعْ مِنْهُمْ اٰثِمًا اَوْ كَفُورًاۚ ﴿٢٤﴾ وَاذْكُرِ اسْمَ رَبِّكَ بُكْرَةً وَاَص۪يلًاۚ ﴿٢٥﴾

**6.** Çavkanîyeke wisan e ku evdên Allah jê vedixwin û (bi devera dixwazin ve) bi xurexur diherikînin.

**7.** Nezrên xwe bicih tînin û ji rojeke ku xerabîya/şerra wê belavbûyîye ditirsin.

**8.** Digel ku jê hez dikin/dilê wan diçê jî xwarin bi kesê miskîn/feqîrê hewcedar û bi sêwî û bi dîl/êsîr didin xwarin.

**9.** “Em bitenê ji bo razîbûna Allah bi we didin xwarin. Em ji we ne xelatek û ne jî spasîyek dixwazin.”

**10.** “Lewre em (ji ber wê) roja mirûzdayî û dirêj û dijwar ji Rabbê xwe ditirsin.”

**11.** Allah, (bi saya îtaeta wan a li dinyayê) wan ji şerra vê rojê parastîye û rûgeşî û şahî daye wan.

**12.** Di muqabilê sebra wan de bi cennet û hevrîşimê tên xelatkirin.

**13.** Li wê derê li ser textan paldayî ne. Li wir ne (germa) tavê û ne jî (sermaya) zemherîyê/çileyê reş dibînin.

**14.** Sî (yên daran ji wan re) nêzkirî ye û (fêkîyên wan) ên quraftinê jî bi dahelînandinekî dahelandî ne (ku gihîştina wan hêsankirî ye).

**15.** Li derdora wan firaqên zîvî û qedehên belûr tên gerandin.

**16.** Firaqên belûr ên ji zîvê, di pîvana (li gorî dilên wan) de ye.

**17.** Ji wan re li wê derê ji vexwarineke ku têkelê wê zencefîl e tê vexwartin.

**18.** Ji kanîyeke (wisan) ku, li wir bi navê selsebîl tê navandin.

**19.** Li der dora wan ciwanên nemir/ebedî digerin. Dema tu wan dibînî tu zen dikî ku ew durên belavbûyî ne.

**20.** Tu (çi çax û bi ku ve) binêrî, tu yê nîmetan û seltenatekî/serwerîyekî mezin bibînî.

**21.** Li ser wan ji hevrîşmê tenik û stûr cilên kesk hene. Bi bazinên zîvî xemilandî ne. Rabbê wan şerabeke têrpaqij bi wan dide vexwarin.

**22.** Ev, xelateke ji bo we (amadekirî) ye. Û xebata we (ya li dinyayê) jî hatîye şekirandin (berdêla wê qat bi qat hatîye zêdekirin).

**23.** Qet tu guman tune, ew ê ku Qur'an (parçe parçe) ji te re daxistîye em in.

**24.** (Herwiha) li ser hukmê Rabbê xwe sebir bike. Îtaetê gunehkar û nankorê wan neke.

**25.** Û sibeh û êvar Rabbê xwe zikir bike.

**26.** Di qismekî şevê de jê re secde bike û bi şev dûv û dirêj wî tesbîh bike.
**27.** Bêguman evana, ya hanhanka/ya zûzûka (jiyana dinyayê) tercîh dikin, lê belê dev ji wê roja giran (ku li pêşîya wan e) berdidin.
**28.** Me ew xuliqandîye û me xuliqandina wan zexm (xweşik) kiriye. Dema ku em bixwazin (em ê wan helak bikin) û yên wekî wan bînin şûna wan.
**29.** Bêguman ev, şîretek e. Êdî kî bivê bila bi bal Rabbê xwe ve rêyek bigire.
**30.** Heta ku Allah nevê/nexwaze hûn nikarin bivên/daxwaz bikin. Bêguman Allah, (zanayê her tiştî) Alîm û (xwedî hikum û hikmet) Hakîm e.
**31.** Kî bixwaze wî daxilê rahmeta xwe dike. Lê ji bo zaliman ezabekî biêş û jan amade kiriye.

## 77. SÛREYA MURSELÂT

*(Sûreya Murselât, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pêncî (50) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya heftê û heftemîn e. Ev sûre, bi peyva Murselât hatîye navandin ku ev peyv di ayeta ewil de dibore û tê ser maneya yên şandî. Di pênc ayetên ewil de pey hev re qesemkirina li ser hin hêzan balrakêş e. Behsa qiyametê û di wê rojê de rewşa mûmînan û kafiran tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bi wan ên li pey hev tên şandin,
**2.** Bi wan ên bi şîdet û bi gurênî diwezînin,
**3.** Bi wan ên nekêm belavdikin,
**4.** Bi wan ên bi qethî ji hev difesilînin,
**5.** Bi wan ên zikir/wehîy dadixînin,
**6.** Ji bo rakirina hincetan û hişyarkirinê (bi van hemûyan) sond be ku,
**7.** Ew (qiyamet) a ku hûn pê hatine weadkirin wê pêk bê.
**8.** Dema stêrk hatin jêbirin,
**9.** Dema asîman hate qelaştin,

وَمِنَ الَّيْلِ فَاسْجُدْ لَهُ وَسَبِّحْهُ لَيْلًا طَوِيلًا ﴿٢٦﴾ اِنَّ هٰؤُلَٓاءِ يُحِبُّونَ الْعَاجِلَةَ
وَيَذَرُونَ وَرَٓاءَهُمْ يَوْمًا ثَقِيلًا ﴿٢٧﴾ نَحْنُ خَلَقْنَاهُمْ وَشَدَدْنَٓا اَسْرَهُمْ
وَاِذَا شِئْنَا بَدَّلْنَٓا اَمْثَالَهُمْ تَبْدِيلًا ﴿٢٨﴾ اِنَّ هٰذِهِ تَذْكِرَةٌ فَمَنْ شَٓاءَ اتَّخَذَ
اِلٰى رَبِّهِ سَبِيلًا ﴿٢٩﴾ وَمَا تَشَٓاؤُنَ اِلَّٓا اَنْ يَشَٓاءَ اللّٰهُ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَلِيمًا حَكِيمًا ﴿٣٠﴾
يُدْخِلُ مَنْ يَشَٓاءُ فِي رَحْمَتِهِ وَالظَّالِمِينَ اَعَدَّ لَهُمْ عَذَابًا اَلِيمًا ﴿٣١﴾

### سُورَةُ الْمُرْسَلَاتِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
وَالْمُرْسَلَاتِ عُرْفًا ﴿١﴾ فَالْعَاصِفَاتِ عَصْفًا ﴿٢﴾ وَالنَّاشِرَاتِ نَشْرًا ﴿٣﴾
فَالْفَارِقَاتِ فَرْقًا ﴿٤﴾ فَالْمُلْقِيَاتِ ذِكْرًا ﴿٥﴾ عُذْرًا اَوْ نُذْرًا ﴿٦﴾
اِنَّمَا تُوعَدُونَ لَوَاقِعٌ ﴿٧﴾ فَاِذَا النُّجُومُ طُمِسَتْ ﴿٨﴾ وَاِذَا السَّمَٓاءُ فُرِجَتْ ﴿٩﴾
وَاِذَا الْجِبَالُ نُسِفَتْ ﴿١٠﴾ وَاِذَا الرُّسُلُ اُقِّتَتْ ﴿١١﴾ لِاَيِّ يَوْمٍ اُجِّلَتْ ﴿١٢﴾
لِيَوْمِ الْفَصْلِ ﴿١٣﴾ وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا يَوْمُ الْفَصْلِ ﴿١٤﴾ وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ
لِلْمُكَذِّبِينَ ﴿١٥﴾ اَلَمْ نُهْلِكِ الْاَوَّلِينَ ﴿١٦﴾ ثُمَّ نُتْبِعُهُمُ الْاٰخِرِينَ ﴿١٧﴾
كَذٰلِكَ نَفْعَلُ بِالْمُجْرِمِينَ ﴿١٨﴾ وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّبِينَ ﴿١٩﴾

**10.** Dema çiya (ji nîşka ve) teriqîn û bûn parçekirî,
**11.** Dema ku hemû pêxember ji bo wextê diyarkirî (ji bo qiyametê) hatin civandin.
**12.** (Ew însan) ji bo kîjan rojê hatin texîrkirin?
**13.** Ji bo Yewmu'l Fesl (hukim di nav însanan de tê dayîn û navbera wan tê veqetandin).
**14.** Ma tu yê ji ku derê bizanibî ka Yewmu'l Fesl/roja jihevcudakirinê çi ye?
**15.** Ew roj, weyl li halê derewkaran be!
**16.** Ma qey me ew ên berê helak nekirin?
**17.** Paşê me ew ên li pey wan tên jî da dûv wan.
**18.** Ha em gunehkaran wisan dikin.
**19.** Ew roj, weyl li halê derewkaran be!

اَلَمْ نَخْلُقْكُمْ مِنْ مَٓاءٍ مَهٖينٍۙ ﴿٢٠﴾ فَجَعَلْنَاهُ فٖي قَرَارٍ مَكٖينٍۙ ﴿٢١﴾
اِلٰى قَدَرٍ مَعْلُومٍۙ ﴿٢٢﴾ فَقَدَرْنَاۗ فَنِعْمَ الْقَادِرُونَ ﴿٢٣﴾ وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّبٖينَ ﴿٢٤﴾
اَلَمْ نَجْعَلِ الْاَرْضَ كِفَاتًاۙ ﴿٢٥﴾ اَحْيَٓاءً وَاَمْوَاتًاۙ ﴿٢٦﴾ وَجَعَلْنَا فٖيهَا رَوَاسِيَ
شَامِخَاتٍ وَاَسْقَيْنَاكُمْ مَٓاءً فُرَاتًاۜ ﴿٢٧﴾ وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّبٖينَ ﴿٢٨﴾
اِنْطَلِقُٓوا اِلٰى مَا كُنْتُمْ بِهٖ تُكَذِّبُونَۚ ﴿٢٩﴾ اِنْطَلِقُٓوا اِلٰى ظِلٍّ
ذٖي ثَلٰثِ شُعَبٍۙ ﴿٣٠﴾ لَا ظَلٖيلٍ وَلَا يُغْنٖي مِنَ اللَّهَبِۜ ﴿٣١﴾ اِنَّهَا تَرْمٖي بِشَرَرٍ
كَالْقَصْرِۚ ﴿٣٢﴾ كَاَنَّهُ جِمَالَتٌ صُفْرٌۜ ﴿٣٣﴾ وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّبٖينَ ﴿٣٤﴾
هٰذَا يَوْمُ لَا يَنْطِقُونَۙ ﴿٣٥﴾ وَلَا يُؤْذَنُ لَهُمْ فَيَعْتَذِرُونَ ﴿٣٦﴾ وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ
لِلْمُكَذِّبٖينَ ﴿٣٧﴾ هٰذَا يَوْمُ الْفَصْلِۚ جَمَعْنَاكُمْ وَالْاَوَّلٖينَ ﴿٣٨﴾ فَاِنْ كَانَ
لَكُمْ كَيْدٌ فَكٖيدُونِ ﴿٣٩﴾ وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّبٖينَ ﴿٤٠﴾ اِنَّ الْمُتَّقٖينَ
فٖي ظِلَالٍ وَعُيُونٍۙ ﴿٤١﴾ وَفَوَاكِهَ مِمَّا يَشْتَهُونَۜ ﴿٤٢﴾ كُلُوا وَاشْرَبُوا
هَنٖيٓـًٔا بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٤٣﴾ اِنَّا كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِنٖينَ ﴿٤٤﴾ وَيْلٌ
يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّبٖينَ ﴿٤٥﴾ كُلُوا وَتَمَتَّعُوا قَلٖيلًا اِنَّكُمْ مُجْرِمُونَ ﴿٤٦﴾
وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّبٖينَ ﴿٤٧﴾ وَاِذَا قٖيلَ لَهُمُ ارْكَعُوا لَا يَرْكَعُونَ ﴿٤٨﴾
وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّبٖينَ ﴿٤٩﴾ فَبِاَيِّ حَدٖيثٍ بَعْدَهُ يُؤْمِنُونَ ﴿٥٠﴾

**20.** Ma qey me hûn ne ji aveke bêqîmet xuliqandin?
**21.** (Paşê) me we li ciheke zexm (di rehmê) de bicih kir.
**22.** Heta demeke diyarkirî.
**23.** Em (li ser kirina van tiştan) qadir in. Em çi xweş qadir in.
**24.** Ew roj, weyl li halê derewkeran be!
**25.** Erê ma me erd nekire cihê civînê?
**26.** (Binê erdê) mirîyan û (serê wê jî) zindîyan (dicivîne).
**27.** Û me di wê de (ji Çiyan) qazixên bilind çikandin. Me avên şêrîn bi we da vexwarin.
**28.** Ew roj, weyl li halê derewkeran be!
**29.** Bi bal wê (cehennem) a ku we diderewand ve biçin.
**30.** Bi bal sîyên (dûmana agir ya) sê şax/sê çiql ve.
**31.** Ne dike sih û ne jî ji alavan diparêze.
**32.** Bêguman ew, çirûskên wisan davêje ku her yek ji wan wekî qesrekî ye.
**33.** Her yekî wekî deveyên zipîzer in (ku rengê wan bi ser reşahîyê dikeve).
**34.** Ew roj, weyl li halê derewkeran be!
**35.** Ev, rojek e ku nikarin biaxivin.
**36.** Ji bo ku ûzrê xwe bixwazin destûr jî li wan nayê dayîn.
**37.** Ew roj, weyl li halê derewkeran be!
**38.** Ev Yewmu'l Fesl e (ku hukim di nav însanan de tê dayîn û navbera wan tê veqetandin). Me hûn û yên berîya we civandin.
**39.** Eger kemînekî ku hûn deynin hebe, (kerem bikin) kêmîna xwe ya li dij min deynin.
**40.** Ew roj, weyl li halê derewkeran be!
**41.** Bêguman ew ên mutteqî, di binê sîyan û li ser kanîyan in.
**42.** Û di nav fêkîyên ku dilê wan dibijîyê de ne.
**43.** Di muqabilê amelên we (ên salih) de êdî bi noşîcanî bixwin û vexwin.
**44.** Muheqeq em, muhsînan/kesên ku evdîtîya xwe herî xweşik dikin wiha xelat dikin.
**45.** Ew roj, weyl li halê derewkeran be!
**46.** Bixwin û hinekî din kêfa ser kêlekê bikin. Lewre hûn ji mucrîman in.
**47.** Ew roj, weyl li halê derewkeran be!
**48.** Dema ku ji wan tê gotin: "Rukû bikin." ew naçin rukûyê.
**49.** Ew roj, weyl li halê derewkeran be!
**50.** (Eger bi vê Qur'anê jî bawerî neynin) êdî piştî vê wê bi kîjan peyvê îman bînin?

## 78. SÛREYA NEBE

الْجُزْءُ ٣٠

*(Sûreya Nebe, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çil (40) ayet e.) Di Qur'anê de sûreya heftê û heştemîn e. Sûreya Nebe, navê xwe ji peyva Nebe sitendîye. Ev peyv di ayeta duyemîn de dibore û tê ser maneya agahîya mezin/giring. Di sûreyê de wekî "Me erd kiriye binrax/doşek?" û "Me çiyan jî kiriye qazix" hin îfadeyên balrakêş hene. Di sûreya Nebe de mijarên bi pifkirina Sûr, bûyerên ku wê pêk bên û mukâfaten cennetîyan û cezayên cehennemîyan tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

سُورَةُ النَّبَإِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ أَرْبَعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

عَمَّ يَتَسَٓاءَلُونَۚ ﴿١﴾ عَنِ النَّبَاِ الْعَظ۪يمِۙ ﴿٢﴾ اَلَّذ۪ي هُمْ ف۪يهِ مُخْتَلِفُونَۜ ﴿٣﴾
كَلَّا سَيَعْلَمُونَۙ ﴿٤﴾ ثُمَّ كَلَّا سَيَعْلَمُونَ ﴿٥﴾ اَلَمْ نَجْعَلِ الْاَرْضَ مِهَادًاۙ ﴿٦﴾
وَالْجِبَالَ اَوْتَادًاۖ ﴿٧﴾ وَخَلَقْنَاكُمْ اَزْوَاجًاۙ ﴿٨﴾ وَجَعَلْنَا نَوْمَكُمْ سُبَاتًاۙ ﴿٩﴾
وَجَعَلْنَا الَّيْلَ لِبَاسًاۙ ﴿١٠﴾ وَجَعَلْنَا النَّهَارَ مَعَاشًاۖ ﴿١١﴾ وَبَنَيْنَا فَوْقَكُمْ
سَبْعًا شِدَادًاۙ ﴿١٢﴾ وَجَعَلْنَا سِرَاجًا وَهَّاجًاۖ ﴿١٣﴾ وَاَنْزَلْنَا مِنَ الْمُعْصِرَاتِ
مَٓاءً ثَجَّاجًاۙ ﴿١٤﴾ لِنُخْرِجَ بِه۪ حَبًّا وَنَبَاتًاۙ ﴿١٥﴾ وَجَنَّاتٍ اَلْفَافًاۜ ﴿١٦﴾ اِنَّ يَوْمَ الْفَصْلِ
كَانَ م۪يقَاتًاۙ ﴿١٧﴾ يَوْمَ يُنْفَخُ فِي الصُّورِ فَتَأْتُونَ اَفْوَاجًاۙ ﴿١٨﴾ وَفُتِحَتِ
السَّمَٓاءُ فَكَانَتْ اَبْوَابًاۙ ﴿١٩﴾ وَسُيِّرَتِ الْجِبَالُ فَكَانَتْ سَرَابًاۜ ﴿٢٠﴾
اِنَّ جَهَنَّمَ كَانَتْ مِرْصَادًاۙ ﴿٢١﴾ لِلطَّاغ۪ينَ مَاٰبًاۙ ﴿٢٢﴾ لَابِث۪ينَ ف۪يهَٓا اَحْقَابًاۚ ﴿٢٣﴾
لَا يَذُوقُونَ ف۪يهَا بَرْدًا وَلَا شَرَابًاۙ ﴿٢٤﴾ اِلَّا حَم۪يمًا وَغَسَّاقًاۙ ﴿٢٥﴾ جَزَٓاءً وِفَاقًاۜ ﴿٢٦﴾
اِنَّهُمْ كَانُوا لَا يَرْجُونَ حِسَابًاۙ ﴿٢٧﴾ وَكَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا كِذَّابًاۜ ﴿٢٨﴾
وَكُلَّ شَيْءٍ اَحْصَيْنَاهُ كِتَابًاۙ ﴿٢٩﴾ فَذُوقُوا فَلَنْ نَز۪يدَكُمْ اِلَّا عَذَابًاۚ ﴿٣٠﴾

**1.** Ew çi ji hevdu dipirsin?
**2.** Wê xebera mezin!
**3.** (Qiyamet) a ku der heqê wê de di îxtîlafê de ne.
**4.** Qet/Tu car! (wekî ku ew li ser îxtîlaf dikin qiyamet, ne gumanbar û ne nediyar e.) Wê di nêz de bibînin/fêm bikin.
**5.** Bi hezar caran qet/tu car! Wê di nêz de bizanibin.
**6.** Ma me ser rûyê erdê nekiriye binrax/doşek?
**7.** Me çiyan jî (nekir) qazix?
**8.** Me hûn cot (wek jin û mêr) xuliqandin.
**9.** Me xewa we kiriye îstirahet.
**10.** Me şev kiriye kemn.
**11.** Me roj jî kiriye dema debarê.
**12.** Me li ser we heft (esman) ên zexm ava kir.
**13.** Me (li asîman) qendîleke ku germ dike (Tav/Roj) çêkiriye.
**14.** Me ji ewrên (şidandî û guvaştî) baraneke pirzêde daxist.
**15.** Ji bo ku em bi wê teneyan û hêşînahîyan derxînin.
**16.** Û (ji bo) bexçeyên (darên wan) di ser hev de (em derxînin).
**17.** Bêguman ew Yewmu'l Fesl (ku hukim di nav însanan de tê dayîn û navbera wan tê veqetandin) demeke diyarkirî ye.
**18.** Roja li sûrê bê pifkirin hûn ê pêl bi pêl werin.
**19.** Asîman hatîye vekirin û bûye derî û dergeh.
**20.** Çiya tên meşandin û bûne leylan/serab/revrevik.
**21.** Bêguman cehennem nêrîngehek e (ku ew ên muşrîk tên çavdêrîkirin).
**22.** Cihlêvegera kesên ji hedê xwe borî û bitirbûyîyan e.
**23.** Bi dirêjahîya demên bêdawî wê li wir bimînin.
**24.** Li wir ne hênikahî û ne jî vexwarin diçêjin/tehm dikin.
**25.** Bitenê ava kelandî û edab/zûxav diçêjin.
**26.** Wek cezayekî li gorî (amelên) wan.
**27.** Lewre wan hêvî nedikirin ku wê hisab ji wan bê pirsîn.
**28.** Wan heta dikaribûn biderewînin ayetên me derewandin.
**29.** Me, her tişt bi nivîsandinê qeyd kiriye.
**30.** De biçêjin/tehm bikin (em binêrin)! Êdî ji ezab pê ve em tiştekî din li we zêde nakin.

اِنَّ لِلْمُتَّق۪ينَ مَفَازًاۙ ﴿٣١﴾ حَدَٓائِقَ وَاَعْنَابًاۙ ﴿٣٢﴾ وَكَوَاعِبَ اَتْرَابًاۙ ﴿٣٣﴾
وَكَاْسًا دِهَاقًاۜ ﴿٣٤﴾ لَا يَسْمَعُونَ ف۪يهَا لَغْوًا وَلَا كِذَّابًاۚ ﴿٣٥﴾ جَزَٓاءً مِنْ رَبِّكَ
عَطَٓاءً حِسَابًاۙ ﴿٣٦﴾ رَبِّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا الرَّحْمٰنِ
لَا يَمْلِكُونَ مِنْهُ خِطَابًاۚ ﴿٣٧﴾ يَوْمَ يَقُومُ الرُّوحُ وَالْمَلٰٓئِكَةُ صَفًّاۜ
لَا يَتَكَلَّمُونَ اِلَّا مَنْ اَذِنَ لَهُ الرَّحْمٰنُ وَقَالَ صَوَابًا ﴿٣٨﴾ ذٰلِكَ الْيَوْمُ
الْحَقُّۚ فَمَنْ شَٓاءَ اتَّخَذَ اِلٰى رَبِّه۪ مَاٰبًا ﴿٣٩﴾ اِنَّٓا اَنْذَرْنَاكُمْ عَذَابًا قَر۪يبًاۚ
يَوْمَ يَنْظُرُ الْمَرْءُ مَا قَدَّمَتْ يَدَاهُ وَيَقُولُ الْكَافِرُ يَا لَيْتَن۪ي كُنْتُ تُرَابًا ﴿٤٠﴾

سُورَةُ النَّازِعَاتِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سِتٌّ وَأَرْبَعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالنَّازِعَاتِ غَرْقًاۙ ﴿١﴾ وَالنَّاشِطَاتِ نَشْطًاۙ ﴿٢﴾ وَالسَّابِحَاتِ سَبْحًاۙ ﴿٣﴾
فَالسَّابِقَاتِ سَبْقًاۙ ﴿٤﴾ فَالْمُدَبِّرَاتِ اَمْرًاۢ ﴿٥﴾ يَوْمَ تَرْجُفُ الرَّاجِفَةُۙ ﴿٦﴾
تَتْبَعُهَا الرَّادِفَةُۜ ﴿٧﴾ قُلُوبٌ يَوْمَئِذٍ وَاجِفَةٌۙ ﴿٨﴾ اَبْصَارُهَا خَاشِعَةٌۢ ﴿٩﴾
يَقُولُونَ ءَاِنَّا لَمَرْدُودُونَ فِي الْحَافِرَةِۜ ﴿١٠﴾ ءَاِذَا كُنَّا عِظَامًا نَخِرَةًۜ ﴿١١﴾ قَالُوا
تِلْكَ اِذًا كَرَّةٌ خَاسِرَةٌۢ ﴿١٢﴾ فَاِنَّمَا هِيَ زَجْرَةٌ وَاحِدَةٌۙ ﴿١٣﴾ فَاِذَا هُمْ بِالسَّاهِرَةِۜ ﴿١٤﴾

**31.** Qet tu guman tune, ji bo mutteqîyan xelasî/rizgarî heye.
**32.** Gelek bexçe û rezên tirî,
**33.** Keçên ku singê wan nû gulîk daye û hevsal in,
**34.** Û qedehên dagirtî.
**35.** Li wê derê peyva vala û derew nabihîzin.
**36.** (Ev,) ji Rabbê te xelatek û diyarîyeke kafî ye/bes e.
**37.** Rabbê erd û esman û tiştên di navbera herduyan de, Rahmân e. Tu kes nikare li dij wî biaxive.
**38.** Roja ku rûh (Cibrîl) û melaîket sefgirtî rawestî ne, ew ên (li dinyayê) rastgo ye ne tê de kesê ku Rahmân destûra wî dide pê ve tu kes napeyive.
**39.** Ha ev roja heq e. Kî bixwaze (bi îman û taatê) bi bal Rabbê xwe ve rêyeke vegerê bigire.
**40.** Qet tu guman tune, me hûn bi ezabekî nêz hişyar kir. Ew roja ku mirov (amel) ên xwe yê di pêş de teqdîm kiriye dibîne yê kafir (wiha) dibêje: "Xwezî ez bibûma ax û xwelî."



## 79. SÛREYA NÂZÎÂT

*(Sûreya Nâzîât Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çil û şeş (46) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya heftê û nehemîn e. Nâzîât, tê ser maneya kişandin/derxistin. Ev peyv di ayeta ewil de dibore û qesem pê hatîye kirin. Sûre, wek sûreya Nâzîât hatîye navandin. Mijarên serekîn ya di vê sûreyê de ev in: Pêkhatina roja qiyametê û aqûbet û warên ku kesên salih/qenc û mûcrîm/sûcdar wê li axîretê bi cih bibin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond bi wan ên ji hev derdixin,
**2.** Bi wan ên bi nermahî distînin,
**3.** Bi wan melevanên ku dimelivin,
**4.** Bi wan ên ku herûdaîm li pêş in,
**5.** Bi wan ên ku karan bi rê ve dibin,
**6.** (Bi van hemûyan sond be ku,) ew roj (qêrîna) hejîner wê (Sûrê) bihejîne.
**7.** Wê (hejîna duyem) di pey wê de bê.
**8.** Wê rojê qelb, (ji ber tirsa wê dîmena/menzereya ku dibîne) bi şîdet dilerize.
**9.** Çavên wan (ji tirsa) xayîzbûyî dinêrin.
**10.** Dibêjin: "Ma qey em ê ji nû ve li heyatê bên vegerandin?"
**11.** "Di wê rewşa ku em ê bibin hestîyên rizîyayî de jî?"
**12.** Gotin: "Nexwe ev (ji bo me) vegereke bi zîyan e."
**13.** Ew, bitenê qîrînek e (ku ji Sûrê bilind dibe).
**14.** (Tu dinêrî ku) di heman demê de li ser erdê ne.

هَلْ اَتٰيكَ حَدٖيثُ مُوسٰىۢ ﴿١٥﴾ اِذْ نَادٰيهُ رَبُّهُ بِالْوَادِ الْمُقَدَّسِ طُوًىۚ ﴿١٦﴾
اِذْهَبْ اِلٰى فِرْعَوْنَ اِنَّهُ طَغٰىۘ ﴿١٧﴾ فَقُلْ هَلْ لَكَ اِلٰٓى اَنْ تَزَكّٰىۙ ﴿١٨﴾
وَاَهْدِيَكَ اِلٰى رَبِّكَ فَتَخْشٰىۚ ﴿١٩﴾ فَاَرٰيهُ الْاٰيَةَ الْكُبْرٰىۘ ﴿٢٠﴾ فَكَذَّبَ
وَعَصٰىۘ ﴿٢١﴾ ثُمَّ اَدْبَرَ يَسْعٰىۘ ﴿٢٢﴾ فَحَشَرَ فَنَادٰىۘ ﴿٢٣﴾ فَقَالَ اَنَا رَبُّكُمُ
الْاَعْلٰىۘ ﴿٢٤﴾ فَاَخَذَهُ اللّٰهُ نَكَالَ الْاٰخِرَةِ وَالْاُولٰىۜ ﴿٢٥﴾ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ
لَعِبْرَةً لِمَنْ يَخْشٰىۜ ﴿٢٦﴾ ءَاَنْتُمْ اَشَدُّ خَلْقًا اَمِ السَّمَٓاءُۜ بَنٰيهَاۣ ﴿٢٧﴾ رَفَعَ
سَمْكَهَا فَسَوّٰيهَاۙ ﴿٢٨﴾ وَاَغْطَشَ لَيْلَهَا وَاَخْرَجَ ضُحٰيهَاۖ ﴿٢٩﴾ وَالْاَرْضَ
بَعْدَ ذٰلِكَ دَحٰيهَاۜ ﴿٣٠﴾ اَخْرَجَ مِنْهَا مَٓاءَهَا وَمَرْعٰيهَاۖ ﴿٣١﴾ وَالْجِبَالَ
اَرْسٰيهَاۙ ﴿٣٢﴾ مَتَاعًا لَكُمْ وَلِاَنْعَامِكُمْۜ ﴿٣٣﴾ فَاِذَا جَٓاءَتِ الطَّٓامَّةُ
الْكُبْرٰىۘ ﴿٣٤﴾ يَوْمَ يَتَذَكَّرُ الْاِنْسَانُ مَا سَعٰىۙ ﴿٣٥﴾ وَبُرِّزَتِ الْجَحٖيمُ
لِمَنْ يَرٰى ﴿٣٦﴾ فَاَمَّا مَنْ طَغٰىۙ ﴿٣٧﴾ وَاٰثَرَ الْحَيٰوةَ الدُّنْيَاۙ ﴿٣٨﴾ فَاِنَّ الْجَحٖيمَ
هِيَ الْمَأْوٰىۜ ﴿٣٩﴾ وَاَمَّا مَنْ خَافَ مَقَامَ رَبِّهٖ وَنَهَى النَّفْسَ عَنِ الْهَوٰىۙ ﴿٤٠﴾
فَاِنَّ الْجَنَّةَ هِيَ الْمَأْوٰىۜ ﴿٤١﴾ يَسْـَٔلُونَكَ عَنِ السَّاعَةِ اَيَّانَ مُرْسٰيهَاۜ ﴿٤٢﴾
فٖيمَ اَنْتَ مِنْ ذِكْرٰيهَاۜ ﴿٤٣﴾ اِلٰى رَبِّكَ مُنْتَهٰيهَاۜ ﴿٤٤﴾ اِنَّمَٓا اَنْتَ مُنْذِرُ
مَنْ يَخْشٰيهَاۜ ﴿٤٥﴾ كَاَنَّهُمْ يَوْمَ يَرَوْنَهَا لَمْ يَلْبَثُٓوا اِلَّا عَشِيَّةً اَوْ ضُحٰيهَا ﴿٤٦﴾

**15.** Ma qey agahîya Mûsa ji te re nehat?
**16.** Wê demê Rabbê wî li newala pîroz, li Tuwayê gazî wî kiribû.
**17.** “Here cem wî. Lewre wî bitirtî kir (taxûtî kir).”
**18.** Jê re bibêje: “Ma tu dixwazî paqij/zelal bibî?”
**19.** “Ma ez te beralîyê Rabbê te bikim? Herwiha tu yê (jê) bitirsî.”
**20.** Ayeta herî mezin nîşanî wî da.
**21.** (Fîrewn) ew derewand û serî hilda.
**22.** Paşê pişta xwe vegerand û (ji bo qedandina daweta tewhîdê) li ber xwe da.
**23.** Piştre (peyrevên xwe) civand û gazî kir.
**24.** Got: “Ez Rabbê we yê herî berz/bilind im!”
**25.** Allah, ew hem bi ezabê dinyayê û hem jî bi ezabê axîretê zeft kir.
**26.** Qet tu guman tune, di vê de ji bo wan ên (ji Allah) ditirsin re îbret heye.
**27.** Ma xuliqandina we zor e an (xuliqandin) a asîman? (Wî) ew ava kir.
**28.** Banê/tawanê wê bilind kir û ew sererast kir.
**29.** Şeva wê tarî kir û dema dûhâyê/berbangê eşkere kir.
**30.** Piştî vê jî li ser rûyê erdê belav kir (an jî gêr kir/gindirand).
**31.** Jê av û mêrga/çêreya wê derxist.
**32.** Çiyayan çikand/qayîm kir.
**33.** Ji bo feyda we û heywanên we.
**34.** Dema ku felaketa herî mezin (qiyamet) hat,
**35.** Ew roj wê însan, karûkirinên xwe bi bîr bîne.
**36.** Ji yên ku dibînin re cehennem derdikeve holê û wê xuya bibe.
**37.** Her kî ji hedê xwe bibore û bitirtî bike,
**38.** Û jiyana dinyayê tercîh bike,
**39.** Qet tu guman tune, cehennem (jê re) sitargeh e.
**40.** Kî jî ji meqamê Rabbê xwe bitirse û ji daxwazên nefsa xwe (yên ne meşru re) bibe asteng,
**41.** Qet tu guman tune, cennet (jê re) sitargeh e.
**42.** Ew, pirsa qiyametê ji te dikin ka kengê (roja wê tê) dê lenger bavêje?
**43.** Tu di der heqê wê de ne xwedî tu agahîyê yî.
**44.** (Agahîya) wê ya dawînî/paşîn li cem Rabbê te ye.
**45.** Tu enceq wan ên ku jê ditirsin hişyar bikî.
**46.** Roja ew wê dibînin, wekî ku ew danekê êvarê an jî danekê sibehê (li dinyayê) mabin




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
عَبَسَ وَتَوَلّٰىۙ ﴿١﴾ اَنْ جَٓاءَهُ الْاَعْمٰىۜ ﴿٢﴾ وَمَا يُدْر۪يكَ لَعَلَّهُ يَزَّكّٰىۙ ﴿٣﴾
اَوْ يَذَّكَّرُ فَتَنْفَعَهُ الذِّكْرٰىۜ ﴿٤﴾ اَمَّا مَنِ اسْتَغْنٰىۙ ﴿٥﴾ فَاَنْتَ
لَهُ تَصَدّٰىۜ ﴿٦﴾ وَمَا عَلَيْكَ اَلَّا يَزَّكّٰىۜ ﴿٧﴾ وَاَمَّا مَنْ جَٓاءَكَ يَسْعٰىۙ ﴿٨﴾
وَهُوَ يَخْشٰىۙ ﴿٩﴾ فَاَنْتَ عَنْهُ تَلَهّٰىۚ ﴿١٠﴾ كَلَّٓا اِنَّهَا تَذْكِرَةٌۚ ﴿١١﴾
فَمَنْ شَٓاءَ ذَكَرَهُۢ ﴿١٢﴾ ف۪ي صُحُفٍ مُكَرَّمَةٍۙ ﴿١٣﴾ مَرْفُوعَةٍ مُطَهَّرَةٍۙ ﴿١٤﴾
بِاَيْد۪ي سَفَرَةٍۙ ﴿١٥﴾ كِرَامٍ بَرَرَةٍۜ ﴿١٦﴾ قُتِلَ الْاِنْسَانُ مَٓا اَكْفَرَهُۜ ﴿١٧﴾
مِنْ اَيِّ شَيْءٍ خَلَقَهُۜ ﴿١٨﴾ مِنْ نُطْفَةٍۜ خَلَقَهُ فَقَدَّرَهُۙ ﴿١٩﴾ ثُمَّ السَّب۪يلَ
يَسَّرَهُۙ ﴿٢٠﴾ ثُمَّ اَمَاتَهُ فَاَقْبَرَهُۙ ﴿٢١﴾ ثُمَّ اِذَا شَٓاءَ اَنْشَرَهُۜ ﴿٢٢﴾ كَلَّا لَمَّا يَقْضِ
مَٓا اَمَرَهُۜ ﴿٢٣﴾ فَلْيَنْظُرِ الْاِنْسَانُ اِلٰى طَعَامِه۪ۙ ﴿٢٤﴾ اَنَّا صَبَبْنَا الْمَٓاءَ
صَبًّاۙ ﴿٢٥﴾ ثُمَّ شَقَقْنَا الْاَرْضَ شَقًّاۙ ﴿٢٦﴾ فَاَنْبَتْنَا ف۪يهَا حَبًّاۙ ﴿٢٧﴾ وَعِنَبًا
وَقَضْبًاۙ ﴿٢٨﴾ وَزَيْتُونًا وَنَخْلًاۙ ﴿٢٩﴾ وَحَدَٓائِقَ غُلْبًاۙ ﴿٣٠﴾ وَفَاكِهَةً وَاَبًّاۙ ﴿٣١﴾
مَتَاعًا لَكُمْ وَلِاَنْعَامِكُمْۜ ﴿٣٢﴾ فَاِذَا جَٓاءَتِ الصَّٓاخَّةُۘ ﴿٣٣﴾



## 80. SÛREYA ABESE

*(Sûreya Abese, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çil û du (42) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya heştêyem e. "Abese" tê ser maneya mehdê xwe kir. Ev peyv di destpêka ayeta yekemîn de dibore. Sûre jî bi vê peyvê hatîye navandin. Sebebê nuzûla vê sûreyê bi navê Abdullah b. Mektûm zilamekî kor e. Dema ku Rasûlullah (ass) giregirên Qûreyşîyan dawetê îslamê dikir ev zilam hat û jê hin şîretan daxwaz kir. Rasûlullah (ass) mehdê xwe kir û berê xwe jê zivirand. Li ser vê bûyerê ayetên di destpêka sûreyê de ku Rasûlullah (ass) hişyar dike nazil bûn.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Mehdê xwe kir û berê xwe vegerand.
**2.** Dema ku ew ê kor (Abdullah b. Ummu Mektum) hat.
**3.** Tu çi dizanî, belkî xwe paqij bikira?
**4.** An jî (ji ayetên guhdar dike) wê şîret bigire û ev şîret wê feyde bidana wî.
**5.** Lê ew kesê (di helwestekî wekî ku hewcedarîya wî ji Allah û ji dînê wî re tune be) xwe mustexnî/ne hewce dibîne (jî),
**6.** Tu berê xwe didî wî (dixwazî ku tesîrê lê bikî).
**7.** Hal ev e ku, ji nepaqijîya wî (ya ji şirkê) ji bo te berpirsîyarîyek tune.
**8.** Lê belê ew kesê ku (ji bo hînbûna dînê xwe bi awayê daxwazker) bi lez tê cem te;
**9.** Ku ew, (ji Allah) ditirse.
**10.** Lê belê tu dev jê berdidî û (bi tiştên din) meşxul dibî.
**11.** Qet/Tu Car (wisan neke!) Qet tu guman tune ew, şîretek/bibîrxistinek e.
**12.** Kî bixwaze wê şîret bigire.
**13.** (Ayetên wî) di suhûfên/di rûpelên bi rûmet de ne.
**14.** (Di suhûfên/rûpelên) berzkirî û paqijkirî de.
**15.** Bi destên katiban/nivîsyaran (tê nivîsandin).
**16.** (Katibên/Nivîsyarên) pir bi rûmet û îtaetkar û qencîkar.
**17.** Însanê qehr lê ketî, çi qas jî nankor e!
**18.** (Allah) ew ji çi tiştî xuliqand?
**19.** Ji dilopek av xuliqand û teqdîr kir.
**20.** Paşê rê jê re hêsan kir.
**21.** Paşê ew mirand û kire qebrê.
**22.** Paşê kî bixwaze ew vedijîne.
**23.** Qet/Tu Car! Wî, fermana (Allah) ku lê hatîye kirin hêj pêk neanîye.
**24.** Însan bila li xwarina xwe binêre.
**25.** Bêguman me avê pirzêde herikandîye.
**26.** Paşê me erd (bi derxistina hêşînahîyan) qelişand.
**27.** Me li wê derê teneyan hêşîn kirin.
**28.** Tirî û nefel (ên ji heywanan re dibe êm),
**29.** Dara zeytûn û xurmeyan,
**30.** Bexçeyên bi darên bilind û gungulî,
**31.** Fêkîyan û mêrgan/çêreyan,
**32.** Ji bo feyda we û heywanên we.
**33.** Dema ku qîrîn (a Sûrê) tê ku ew guhan ker dike

**34.** Ew roj mirov, ji birayê xwe direve,
**35.** Ji dê û bavê xwe,
**36.** Ji jina xwe û ji zarokên xwe.
**37.** Ew roj, ji her yekî ji wan re karek/derdek wî ku wî meşxûl dike.
**38.** Ew roj (hinek) rû ronî ne/rûgeş in.
**39.** (Rûyên wan) bi ken û bi kêf in.
**40.** Ew roj (hinek) rû hene ku bi tozê wergirtî ne.
**41.** Reşetarêyeke (wekî tenîya dûmanê) sîmayên wan nixumandîye.
**42.** Ha ewana, ew ên kafir û facir bixwe ne.



## 81. SÛREYA TEKWÎR

*(Sûreya Tekwîr, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û bîst û neh (29) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya heştê û yekemîn e. Sûre, navê xwe ji peyva "Kuwîret" sitendîye. Ev peyv di ayeta yekemîn de dibore û behsa pêçandina rojê dike ku ev bûyer bixwe ji elametên qiyametê ye. Di sûreyê de serate mijarên qiyamet û wehîy û nubûwet tên bi dest girtin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Dema ku roj tê pêçandin (û tarîkirin),
**2.** Dema ku stêrk hildiweşin û belav bibin,
**3.** Dema ku çiya tên meşandin,
**4.** Dema ku deveyên avis di rewşa xwe de tên terikandin/bêxwedî dimînin,
**5.** Dema ku heywanên kovî li hev tên civandin,
**6.** Dema ku behr tên pêxistin,
**7.** Dema ku nefs tên hevcotkirin (rûh û ceset digihîjin hev),
**8.** Dema ku ji qîzika bi saxîtî hatîye binaxkirin tê pirsîn,
**9.** (Dema tê pirskirin:) "Ji ber çi sûcî hatîye kuştin?"
**10.** Dema ku sahîfe/rûpel belavbûn û vebûn,

يَوْمَ يَفِرُّ الْمَرْءُ مِنْ اَخِيهِ ﴿٣٤﴾ وَاُمِّهِ وَاَبِيهِ ﴿٣٥﴾ وَصَاحِبَتِهِ وَبَنِيهِ ﴿٣٦﴾
لِكُلِّ امْرِئٍ مِنْهُمْ يَوْمَئِذٍ شَاْنٌ يُغْنِيهِ ﴿٣٧﴾ وُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ
مُسْفِرَةٌ ﴿٣٨﴾ ضَاحِكَةٌ مُسْتَبْشِرَةٌ ﴿٣٩﴾ وَوُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ عَلَيْهَا
غَبَرَةٌ ﴿٤٠﴾ تَرْهَقُهَا قَتَرَةٌ ﴿٤١﴾ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْكَفَرَةُ الْفَجَرَةُ ﴿٤٢﴾

سُورَةُ التَّكْوِيرِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ تِسْعٌ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

اِذَا الشَّمْسُ كُوِّرَتْ ﴿١﴾ وَاِذَا النُّجُومُ انْكَدَرَتْ ﴿٢﴾ وَاِذَا الْجِبَالُ
سُيِّرَتْ ﴿٣﴾ وَاِذَا الْعِشَارُ عُطِّلَتْ ﴿٤﴾ وَاِذَا الْوُحُوشُ حُشِرَتْ ﴿٥﴾ وَاِذَا
الْبِحَارُ سُجِّرَتْ ﴿٦﴾ وَاِذَا النُّفُوسُ زُوِّجَتْ ﴿٧﴾ وَاِذَا الْمَوْؤُ۫دَةُ سُئِلَتْ ﴿٨﴾
بِاَيِّ ذَنْبٍ قُتِلَتْ ﴿٩﴾ وَاِذَا الصُّحُفُ نُشِرَتْ ﴿١٠﴾ وَاِذَا السَّمَٓاءُ
كُشِطَتْ ﴿١١﴾ وَاِذَا الْجَحِيمُ سُعِّرَتْ ﴿١٢﴾ وَاِذَا الْجَنَّةُ اُزْلِفَتْ ﴿١٣﴾
عَلِمَتْ نَفْسٌ مَٓا اَحْضَرَتْ ﴿١٤﴾ فَلَٓا اُقْسِمُ بِالْخُنَّسِ ﴿١٥﴾ اَلْجَوَارِ
الْكُنَّسِ ﴿١٦﴾ وَالَّيْلِ اِذَا عَسْعَسَ ﴿١٧﴾ وَالصُّبْحِ اِذَا تَنَفَّسَ ﴿١٨﴾
اِنَّهُ لَقَوْلُ رَسُولٍ كَرِيمٍ ﴿١٩﴾ ذ۪ي قُوَّةٍ عِنْدَ ذِي الْعَرْشِ مَك۪ينٍ ﴿٢٠﴾

**11.** Dema ku asîman ji hev ket û hate pêçandin,
**12.** Dema ku (agirê) cehennemê tê pêxistin û geş dibe,
**13.** Dema ku cennet tê nêzkirin,
**14.** Êdî her nefs, hîn bûye ku (ji bo roja qiyametê) çi amade kiriye (û bi xwe re anîye).
**15.** Bi wan stêrkên ku bi roj winda dibin û şevê de derdikevin sond be.
**16.** Bi wan ên (di rêgehekê de) diherikin û vedigerin şûna xwe,
**17.** Dema vedigere û diçe bi şevê,
**18.** Û (sond be) bi sibeha (ku dest bi ronahîyê dike û) hilm distîne,
**19.** Bêguman ew (Qur'an), peyvek e ku ew qasid (Cibrîl) a pir bi rûmet (anîye).
**20.** (Cibrîl ku) xwedî hêz e û li cem xwedîyê erşê qedirbilind e,

مُطَاعٍ ثَمَّ اَمِينٍ ﴿٢١﴾ وَمَا صَاحِبُكُمْ بِمَجْنُونٍ ﴿٢٢﴾ وَلَقَدْ رَاٰهُ بِالْاُفُقِ
الْمُبِينِ ﴿٢٣﴾ وَمَا هُوَ عَلَى الْغَيْبِ بِضَنِينٍ ﴿٢٤﴾ وَمَا هُوَ بِقَوْلِ شَيْطَانٍ
رَجِيمٍ ﴿٢٥﴾ فَاَيْنَ تَذْهَبُونَ ﴿٢٦﴾ اِنْ هُوَ اِلَّا ذِكْرٌ لِلْعَالَمِينَ ﴿٢٧﴾ لِمَنْ شَاءَ
مِنْكُمْ اَنْ يَسْتَقِيمَ ﴿٢٨﴾ وَمَا تَشَاؤُنَ اِلَّا اَنْ يَشَاءَ اللّٰهُ رَبُّ الْعَالَمِينَ ﴿٢٩﴾

سُورَةُ الْاِنْفِطَارِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ تِسْعَ عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

اِذَا السَّمَاءُ انْفَطَرَتْ ﴿١﴾ وَاِذَا الْكَوَاكِبُ انْتَثَرَتْ ﴿٢﴾ وَاِذَا الْبِحَارُ
فُجِّرَتْ ﴿٣﴾ وَاِذَا الْقُبُورُ بُعْثِرَتْ ﴿٤﴾ عَلِمَتْ نَفْسٌ مَا قَدَّمَتْ وَاَخَّرَتْ ﴿٥﴾
يَا اَيُّهَا الْاِنْسَانُ مَا غَرَّكَ بِرَبِّكَ الْكَرِيمِ ﴿٦﴾ اَلَّذِي خَلَقَكَ فَسَوّٰيكَ فَعَدَلَكَ ﴿٧﴾
فِي اَيِّ صُورَةٍ مَا شَاءَ رَكَّبَكَ ﴿٨﴾ كَلَّا بَلْ تُكَذِّبُونَ بِالدِّينِ ﴿٩﴾ وَاِنَّ
عَلَيْكُمْ لَحَافِظِينَ ﴿١٠﴾ كِرَامًا كَاتِبِينَ ﴿١١﴾ يَعْلَمُونَ مَا تَفْعَلُونَ ﴿١٢﴾
اِنَّ الْاَبْرَارَ لَفِي نَعِيمٍ ﴿١٣﴾ وَاِنَّ الْفُجَّارَ لَفِي جَحِيمٍ ﴿١٤﴾ يَصْلَوْنَهَا يَوْمَ الدِّينِ ﴿١٥﴾
وَمَا هُمْ عَنْهَا بِغَائِبِينَ ﴿١٦﴾ وَمَا اَدْرٰيكَ مَا يَوْمُ الدِّينِ ﴿١٧﴾ ثُمَّ مَا اَدْرٰيكَ
مَا يَوْمُ الدِّينِ ﴿١٨﴾ يَوْمَ لَا تَمْلِكُ نَفْسٌ لِنَفْسٍ شَيْـًٔا وَالْاَمْرُ يَوْمَئِذٍ لِلّٰهِ ﴿١٩﴾

**21.** Îtaet (lê tê) kirin û têrbaş ewledar e.
**22.** Hevalê we (Muhammed), ne dîn e.
**23.** Sond be ku, wî li ufûqê bi awayê vikîvekirî ew (Cibrîl) dîtîye.
**24.** Ew, agahîyên xeybê (ya ku ji semayê distîne, di ragihandina wan) de qesîsî nake.
**25.** Ew, ne peyva şeytanê qewirandî/recimandî ye.
**26.** (Digel vê, hûn dev jê berdidin û) bi ku ve diçin?
**27.** Ew, bitenê ji aleman re bibîrxistinek e.
**28.** Ji bo kesê ji nav we dixwaze ku îstîqamet bibîne.
**29.** Heta ku Allahê Rabbê aleman nevê/nexwaze hûn nikarin bivên/daxwaz bikin.



## 82. SÛREYA ÎNFÎTAR

*(Sûreya Înfîtar, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û nozdeh (19) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya heştê û duyemîn e. "Înfîtar" tê ser maneya qelişandin. Ev sûre, bi gelemperî behsa bûyerên qiyametê dike û berpirsîyarîyên însan ya li dij Allah (ac) û her tiştên ku însan dikin bê îstîsna ji alî melaîketan ve tên qeydkirin û ew ên qenc dikevin cennetê û yên mucrîm jî dikevin cehenneme vedibêje.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Dema ku asîman diqelişe,
**2.** Dema ku stêrk hildiweşin û belav dibin,
**3.** Dema ku behr tên teqîn/tên beliqîn û fûrandin,
**4.** Dema ku qebr/gor serûbinî hev dibin,
**5.** Her nefs (çi karên) teqdîm kiriye û (çi terk kiriye û) daye paş, hîn dibe.
**6.** Ya însan! Çi tiştî tu li hemberî Rabbê te yê Kerîm xapandîye?
**7.** Ew e ku te xuliqand û te rêkûpêk kir û li ser ahengê/muwazeneyê çêkir.
**8.** Bi awayekî ku daxwaz kiriye te civand û heyî kir.
**9.** Nexêr! Berevajî, hûn hisabê diderewînin.
**10.** Bêguman li ser we (melaîketên) çavdêr hene,
**11.** Nivîsyarên bi rûmet.
**12.** Ew, bi ya ku hûn dikin dizanin.
**13.** Qet tu guman tune ew Ebrar (ên pirzêde qencî dikin), di nav nîmetan de ne.
**14.** Lê ew ên facir helbet di cehennemê de ne.
**15.** Di roja dîn de wê bikevin wê derê.
**16.** Ew nikarin (yek lehzeyekî jî) winda bibin û jê dûr bibin.
**17.** Tu yê ji ku bizanibî ka Roja Dîn kengê ye?
**18.** Û dîsa tu yê bi Roja Dîn ji ku derê bizanibî?
**19.** Ew roj feydeya kesekî ji kesekî din re tune. Ew roj emir bitenê aîdê Allah e.



## 83. SÛREYA MUTAFFIFÎN

*(Sûreya Mutaffifîn, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sî û şeş (36) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya heştê û sêyemîn e. Peyva "Mutaffifîn" wek pirjimarî tê ser maneya kesên hîlekar. Sûre, bi weyl anîna kesên wisan dest pê dike. Di sûreya Mutaffifîn de mijarên xerabîya hîlekarîya wezn û pîvanê û cezakirina kesên derewker û gunehkar û kafiran û ketina cennetê ya kesên qenc û nîmetên cennetê tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Weyl li wan ên kêm dipîvin û kêm diwezinînin be.
**2.** Dema ku ew ji însanan tiştekî dipîvin û distînin bitemamî/bêkêmasî distînin.
**3.** Lê dema dipîvin an dikişînin kêm dikin (didin ber zerarê).
**4.** Ma ev ên ha nafikirin ku wê bên vejandin?
**5.** Ji bo rojeke mezin.
**6.** Ew roj hemû însan, wê li ber Rabbê aleman li pîya bisekinin.
**7.** Qet/Tu car (ne wekî zen dikin e)! Qet tu guman tune ku kitêba faciran di "Siccîn" de ye.
**8.** Ma tu yê ji ku bizanibî "Siccîn" çi ye?
**9.** Kitêbeke nivîsandî ye.
**10.** Ew roj, weyl li halê derewkeran be!
**11.** Ew in ku; Roja Dîn/Roja Hisabê diderewînin.
**12.** Hal ev e ku, enceq ew ê ji hedê xwe borîye û pir gunehkar e diderewîne.
**13.** Dema ku ayetên me jê re tên xwendin, dibêje: "çîrok û çîvanokên berê".
**14.** Qet/Tu car (ne wekî gotina wan e)! Berevajî, (guneh) ên kirine di qelbê wan de zeng girtîye (ji bo fêmkirina heqîyê ji wan re bûye asteng).
**15.** Qet/Tu car! Bêguman ku ew, wê rojê ji Rabbê xwe hatine nuxamtin (wê nabînin).

سُورَةُ الْمُطَفِّفِينَ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سِتٌّ وَثَلَاثُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

وَيْلٌ لِلْمُطَفِّفِينَ ﴿١﴾ اَلَّذِينَ اِذَا اكْتَالُوا عَلَى النَّاسِ يَسْتَوْفُونَ ﴿٢﴾ وَاِذَا
كَالُوهُمْ اَوْ وَزَنُوهُمْ يُخْسِرُونَ ﴿٣﴾ اَلَا يَظُنُّ اُو۬لٰٓئِكَ اَنَّهُمْ مَبْعُوثُونَ ﴿٤﴾ لِيَوْمٍ
عَظِيمٍ ﴿٥﴾ يَوْمَ يَقُومُ النَّاسُ لِرَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿٦﴾ كَلَّٓا اِنَّ كِتَابَ الْفُجَّارِ
لَفِي سِجِّينٍ ﴿٧﴾ وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا سِجِّينٌ ﴿٨﴾ كِتَابٌ مَرْقُومٌ ﴿٩﴾ وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ
لِلْمُكَذِّبِينَ ﴿١٠﴾ اَلَّذِينَ يُكَذِّبُونَ بِيَوْمِ الدِّينِ ﴿١١﴾ وَمَا يُكَذِّبُ بِهٖٓ اِلَّا كُلُّ مُعْتَدٍ
اَثِيمٍ ﴿١٢﴾ اِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِ اٰيَاتُنَا قَالَ اَسَاطِيرُ الْاَوَّلِينَ ﴿١٣﴾ كَلَّا بَلْ رَانَ عَلٰى قُلُوبِهِمْ
مَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿١٤﴾ كَلَّٓا اِنَّهُمْ عَنْ رَبِّهِمْ يَوْمَئِذٍ لَمَحْجُوبُونَ ﴿١٥﴾
ثُمَّ اِنَّهُمْ لَصَالُوا الْجَحِيمِ ﴿١٦﴾ ثُمَّ يُقَالُ هٰذَا الَّذٖي كُنْتُمْ بِهٖ تُكَذِّبُونَ ﴿١٧﴾
كَلَّٓا اِنَّ كِتَابَ الْاَبْرَارِ لَفِي عِلِّيِّينَ ﴿١٨﴾ وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا عِلِّيُّونَ ﴿١٩﴾ كِتَابٌ
مَرْقُومٌ ﴿٢٠﴾ يَشْهَدُهُ الْمُقَرَّبُونَ ﴿٢١﴾ اِنَّ الْاَبْرَارَ لَفِي نَعِيمٍ ﴿٢٢﴾ عَلَى الْاَرَٓائِكِ
يَنْظُرُونَ ﴿٢٣﴾ تَعْرِفُ فِي وُجُوهِهِمْ نَضْرَةَ النَّعِيمِ ﴿٢٤﴾ يُسْقَوْنَ مِنْ رَحِيقٍ
مَخْتُومٍ ﴿٢٥﴾ خِتَامُهُ مِسْكٌ وَفِي ذٰلِكَ فَلْيَتَنَافَسِ الْمُتَنَافِسُونَ ﴿٢٦﴾

**16.** Paşê ew, teqez/muheqeq wê bikevin cehennemê.
**17.** Paşê (ji wan re wiha) tê gotin: "Ev, tiştê ku we derewandîye."
**18.** Qet/Tu car (ne wekî zen dikin e)! Qet tu guman tune ku kitêba Ebraran (ên pirzêde qencî dikin), di "Îlliyîn" de ye.
**19.** Ma tu yê ji ku bizanibî "Îlliyîn" çi ye?
**20.** Kitêbeke nivîsandî ye.
**21.** Ew ên (ji Allah re) nêzikkirî ne, ew çavdêrî/muşahede dikin.
**22.** Bêguman Ebrar (ên pirzêde qencî dikin), di nav nîmetan de ne.
**23.** Li ser textan (derdorê) temaşe dikin.
**24.** Tu di rûyên wan de berqa (şahîya) nîmetan dibînî.
**25.** Ew ji şerabeke mohrkirî (ya ku qet nevebûyî) tên vexwarin.
**26.** Dawîya wê misk e. Ha ew ên pêşbazîyê dikin, bila ji bo vê pêşbazîyê bikin.

وَمِزَاجُهُ مِنْ تَسْنِيمٍۙ ﴿٢٧﴾ عَيْنًا يَشْرَبُ بِهَا الْمُقَرَّبُونَۜ ﴿٢٨﴾ اِنَّ الَّذِينَ
اَجْرَمُوا كَانُوا مِنَ الَّذِينَ اٰمَنُوا يَضْحَكُونَۘ ﴿٢٩﴾ وَاِذَا مَرُّوا
بِهِمْ يَتَغَامَزُونَۘ ﴿٣٠﴾ وَاِذَا انْقَلَبُٓوا اِلٰٓى اَهْلِهِمُ انْقَلَبُوا فَكِهِينَۘ ﴿٣١﴾
وَاِذَا رَاَوْهُمْ قَالُٓوا اِنَّ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ لَضَٓالُّونَۙ ﴿٣٢﴾ وَمَٓا اُرْسِلُوا عَلَيْهِمْ
حَافِظِينَۜ ﴿٣٣﴾ فَالْيَوْمَ الَّذِينَ اٰمَنُوا مِنَ الْكُفَّارِ يَضْحَكُونَۙ ﴿٣٤﴾
عَلَى الْاَرَٓائِكِۙ يَنْظُرُونَۜ ﴿٣٥﴾ هَلْ ثُوِّبَ الْكُفَّارُ مَا كَانُوا يَفْعَلُونَ ﴿٣٦﴾

سُورَةُ الْاِنْشِقَاقِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسٌ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
اِذَا السَّمَٓاءُ انْشَقَّتْۙ ﴿١﴾ وَاَذِنَتْ لِرَبِّهَا وَحُقَّتْۙ ﴿٢﴾ وَاِذَا الْاَرْضُ
مُدَّتْۙ ﴿٣﴾ وَاَلْقَتْ مَا فِيهَا وَتَخَلَّتْۙ ﴿٤﴾ وَاَذِنَتْ لِرَبِّهَا وَحُقَّتْۜ ﴿٥﴾
يَٓا اَيُّهَا الْاِنْسَانُ اِنَّكَ كَادِحٌ اِلٰى رَبِّكَ كَدْحًا فَمُلَاقِيهِۚ ﴿٦﴾ فَاَمَّا مَنْ اُو۫تِيَ
كِتَابَهُ بِيَمِينِهِۙ ﴿٧﴾ فَسَوْفَ يُحَاسَبُ حِسَابًا يَسِيرًاۙ ﴿٨﴾ وَيَنْقَلِبُ
اِلٰٓى اَهْلِهِ مَسْرُورًاۜ ﴿٩﴾ وَاَمَّا مَنْ اُو۫تِيَ كِتَابَهُ وَرَٓاءَ ظَهْرِهِۙ ﴿١٠﴾ فَسَوْفَ
يَدْعُوا ثُبُورًاۙ ﴿١١﴾ وَيَصْلٰى سَعِيرًاۜ ﴿١٢﴾ اِنَّهُ كَانَ فٖٓي اَهْلِهِ مَسْرُورًاۜ ﴿١٣﴾

**27.** Têkela wê (ji kanîya) Tesnîm e.
**28.** (Tesnîm,) kanîyek e ku yên nêzîkkirî (yê Allah) in ji wê divexwin.
**29.** Qet tu guman tune ew ên noqî gunehan bûne, bi mûmînan re tinaz dikirin.
**30.** Dema ku rastî wan dihatin bi çav û birûyên xwe ew nîşan didan (tinaz bi wan dikirin).
**31.** Dema ku bi bal malbatên xwe ve dizivirîn bi kêfxweşî vedigerîyan.
**32.** Dema ku wan didîtin, digotin: “Bêşik, evana rêşaş in.”
**33.** Lê ew, li ser wan (mûmînan) wek çavdêr nehatibûn şandin.
**34.** Lê belê îro jî ew ên îman anîne bi kafiran dikenin.
**35.** Li ser textan (derdorê) temaşe dikin.
**36.** Gelo ew ên kafir, mikafata ya ku kirine (ji ber kêf û tinazkarîya bi mûmînan) sitendin?



## 84. SÛREYA ÎNŞÎQAQ

*(Sûreya Înşîqaq, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û bîst û pênc (25) ayet e.)*

*Di Qur’anê de sûreya heştê û çaremîn e. Sûreya Înşîqaq, navê xwe ji peyva “Înşîqaq” sitendîye ku tê ser maneya qelişîn/şeqitîn/terikîn. Di vê sûreyê de bûyerên qiyametê û kesên ji ber deftera amelên xwe ve bi dilşadî vedigerin cem malbata xwe û cezadayîna kesên ehlê xerabîyê ne tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Dema ku asîman dibe şeq,
**2.** Dema ku gûh dide Rabbê xwe û bi awayê lêhatî îtaeta wî dike,
**3.** Dema ku erd têrbaş tê dirêjkirin,
**4.** Dema ku tiştên di nava xwe de davêje û vala dibe,
**5.** Dema ku gûh dide Rabbê xwe û bi awayê lêhatî îtaeta wî dike.
**6.** Ya însan! Qet guman tune ku (ji bo razîbûna) Rabbê xwe tu yê herûdaîm li ber xwe bidî û axir tu yê leqayî wî bibî.
**7.** Kitêba kî jî ji milê rastê ve hatibe dayîn,
**8.** Ew, bi pirsyarîyeke hêsan wê bikişe hisabê.
**9.** Û wê bi kêfxweşî vegere cem malbata xwe.
**10.** Lê Kitêba kî jî ji paş (ji milê çepê) ve bê dayîn,
**11.** Bi zarînî dibêje: “Weyl li min!” û gazî mirinê dike.
**12.** Û wê bikeve agirekî ku alavên bi erjeng direşîne.
**13.** Hal ev e ku ew, (li dinyayê) di nav malbata xwe de kêfxweş bû.

**14.** Lewre wî, zen dikir ku wê (bi bal Rabbê xwe ve) nevegere.

**15.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, helbet Rabbê wî li ser wî bînende ye.




**16.** Bi şefeqê qesem dikim,

**17.** Bi şevê û bi tiştê ku li xwe bar kiriye,

**18.** Bi hîva çardeşevî,

**19.** Hûn ê ji rewşekî bikevin rewşeke din (sehneyên qiyametê ya sehim/erjeng hûn ê bi dore bijîn).

**20.** Çi dibe ji wan ku îman naynin?

**21.** Dema ku Quran tê xwendin naçin secdê.

**22.** Berevajî ew kafir diderewînin.

**23.** Allah, bi ya ku ew di dilê xwe de vedişêrin dizane.

**24.** Mizgînîya ezabekî biêş û jan bide wan.

**25.** Ew ên îman anîne û amelên salih kirine ne tê de. Ji bo wan xelateke bênavber heye.

## 85. SÛREYA BÛRÛC

*(Sûreya Bûrûc, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û bîst û du (22) ayet e)*

*Sûre, navê xwe ji peyva "Bûrûc" stendîye ku di ayeta yekemîn de dibore û tê ser maneya bircan. Sûreya Bûrûc, bi qesema li ser asîmana xwedî bircan dest pê dike. Mijarên qûdreta Allah (ac) û kesên ku di rêya Allah (ac) de tengezarî dikşînin dê bikevin cennetê û aqûbeta kesên eziyetê didin muslîman jî cehennem e tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond bi wê asîmana xwedîye bircan,

**2.** Bi roja hatîye weadkirin,

**3.** Bi wî yê ku şahidî dike û şahidî lê tê kirin.

**4.** Qehr li xwedîyên xendeqan be (ku mûmînan avêtin nava bîrên agir)!

إِنَّهُ ظَنَّ أَنْ لَنْ يَحُورَ ﴿١٤﴾ بَلٰى إِنَّ رَبَّهُ كَانَ بِهِ بَصِيرًا ﴿١٥﴾ فَلَا أُقْسِمُ بِالشَّفَقِ ﴿١٦﴾
وَاللَّيْلِ وَمَا وَسَقَ ﴿١٧﴾ وَالْقَمَرِ إِذَا اتَّسَقَ ﴿١٨﴾ لَتَرْكَبُنَّ طَبَقًا عَنْ طَبَقٍ ﴿١٩﴾
فَمَا لَهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٢٠﴾ وَإِذَا قُرِئَ عَلَيْهِمُ الْقُرْاٰنُ لَا يَسْجُدُونَ ﴿٢١﴾ بَلِ
الَّذِينَ كَفَرُوا يُكَذِّبُونَ ﴿٢٢﴾ وَاللّٰهُ أَعْلَمُ بِمَا يُوعُونَ ﴿٢٣﴾ فَبَشِّرْهُمْ بِعَذَابٍ
أَلِيمٍ ﴿٢٤﴾ إِلَّا الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَهُمْ أَجْرٌ غَيْرُ مَمْنُونٍ ﴿٢٥﴾

## سُورَةُ الْبُرُوجِ

مَكِّيَّةٌ وَهِيَ اثْنَتَانِ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

وَالسَّمَاءِ ذَاتِ الْبُرُوجِ ﴿١﴾ وَالْيَوْمِ الْمَوْعُودِ ﴿٢﴾ وَشَاهِدٍ وَمَشْهُودٍ ﴿٣﴾ قُتِلَ
أَصْحَابُ الْأُخْدُودِ ﴿٤﴾ النَّارِ ذَاتِ الْوَقُودِ ﴿٥﴾ إِذْ هُمْ عَلَيْهَا قُعُودٌ ﴿٦﴾ وَهُمْ
عَلٰى مَا يَفْعَلُونَ بِالْمُؤْمِنِينَ شُهُودٌ ﴿٧﴾ وَمَا نَقَمُوا مِنْهُمْ إِلَّا أَنْ يُؤْمِنُوا
بِاللّٰهِ الْعَزِيزِ الْحَمِيدِ ﴿٨﴾ الَّذِي لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْأَرْضِ وَاللّٰهُ
عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ شَهِيدٌ ﴿٩﴾ إِنَّ الَّذِينَ فَتَنُوا الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ ثُمَّ لَمْ يَتُوبُوا
فَلَهُمْ عَذَابُ جَهَنَّمَ وَلَهُمْ عَذَابُ الْحَرِيقِ ﴿١٠﴾ إِنَّ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ لَهُمْ جَنَّاتٌ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْأَنْهَارُ ذٰلِكَ الْفَوْزُ الْكَبِيرُ ﴿١١﴾

**5.** Agirê pêxistî de,

**6.** Bi bîr bîne dema ku li derdora agir (cihên xwe girtibûn),

**7.** Tiştên ku bi mûmînan dikirin temaşe dikirin.

**8.** Wan ji ber yek sedema ku ewana bi Allah (ê xwedî îzzet û her tiştî mexlûb dike) Azîz û (yê ku herî zêde hemd û pesinandinê heq dike û ji alîyê heyînan ve tê pesinandin) Hamîd re îman anîne tol/heyf ji wan distînin.

**9.** Ew (Allah) e ku hakimîyeta/serwerîya erd û esmanan bitenê aîdê wî ye. Allah, şahidê her tiştî ye.

**10.** Bêguman ew ên ku li mêr û jinên mûmîn îşkence kirine û paşê jî tobe nekirine re cehennem û ezabê bi şewat heye.

**11.** Qet guman tune, ji ew ên îman anîne û amelên salih kirine re, cennetên ku di binê wan de çem diherikin heye. Ha ev e rizgarîya/qezenca mezin.

إِنَّ بَطْشَ رَبِّكَ لَشَدِيدٌ ﴿١٢﴾ إِنَّهُ هُوَ يُبْدِئُ وَيُعِيدُ ﴿١٣﴾ وَهُوَ الْغَفُورُ
الْوَدُودُ ﴿١٤﴾ ذُو الْعَرْشِ الْمَجِيدُ ﴿١٥﴾ فَعَّالٌ لِمَا يُرِيدُ ﴿١٦﴾ هَلْ أَتَاكَ حَدِيثُ
الْجُنُودِ ﴿١٧﴾ فِرْعَوْنَ وَثَمُودَ ﴿١٨﴾ بَلِ الَّذِينَ كَفَرُوا فِي تَكْذِيبٍ ﴿١٩﴾ وَاللَّهُ
مِنْ وَرَائِهِمْ مُحِيطٌ ﴿٢٠﴾ بَلْ هُوَ قُرْآنٌ مَجِيدٌ ﴿٢١﴾ فِي لَوْحٍ مَحْفُوظٍ ﴿٢٢﴾

سُورَةُ الطَّارِقِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سَبْعَ عَشْرَةَ آيَةً

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

وَالسَّمَاءِ وَالطَّارِقِ ﴿١﴾ وَمَا أَدْرَاكَ مَا الطَّارِقُ ﴿٢﴾ النَّجْمُ الثَّاقِبُ ﴿٣﴾ إِنْ كُلُّ
نَفْسٍ لَمَّا عَلَيْهَا حَافِظٌ ﴿٤﴾ فَلْيَنْظُرِ الْإِنْسَانُ مِمَّ خُلِقَ ﴿٥﴾ خُلِقَ مِنْ مَاءٍ
دَافِقٍ ﴿٦﴾ يَخْرُجُ مِنْ بَيْنِ الصُّلْبِ وَالتَّرَائِبِ ﴿٧﴾ إِنَّهُ عَلَىٰ رَجْعِهِ لَقَادِرٌ ﴿٨﴾
يَوْمَ تُبْلَى السَّرَائِرُ ﴿٩﴾ فَمَا لَهُ مِنْ قُوَّةٍ وَلَا نَاصِرٍ ﴿١٠﴾ وَالسَّمَاءِ ذَاتِ الرَّجْعِ ﴿١١﴾
وَالْأَرْضِ ذَاتِ الصَّدْعِ ﴿١٢﴾ إِنَّهُ لَقَوْلٌ فَصْلٌ ﴿١٣﴾ وَمَا هُوَ بِالْهَزْلِ ﴿١٤﴾ إِنَّهُمْ
يَكِيدُونَ كَيْدًا ﴿١٥﴾ وَأَكِيدُ كَيْدًا ﴿١٦﴾ فَمَهِّلِ الْكَافِرِينَ أَمْهِلْهُمْ رُوَيْدًا ﴿١٧﴾

سُورَةُ الْأَعْلَىٰ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ تِسْعَ عَشْرَةَ آيَةً

**12.** Bêşik, zeftkirina Rabbê te pir dijwar e.

**13.** Lewre yê ku pêşanî heyî dike û (bi vejandinê) dizivirîne ew e.

**14.** Allah, (yê ku gunehan dibexşîne/efû dike û disitirîne û ji aqubeta gunehan evdên xwe diparêze) Xafûr û (ew ê hez evdên xwe dike û evdên wî jî hez jê dikin û di dilan de hezkirinê dixûliqîne) Wedûd e.

**15.** Xwedîyê erşê ye. (Îhsana wê pir û bi rûmet û hertim tê pesinandin) El-Mecîd e.

**16.** Çi bixwaze dike.

**17.** Agahîya artêşan/ordîyan hate te?

**18.** (Agahîya) Fîrewn û Semûd?

**19.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî, ew ên kafir di derewîneke bênavber de ne.

**20.** Allah, yê Muhît e ku kafiran pişt wan de dorpêç kiriye.

**21.** Berevajî, ew Qur'aneke Mecîd/bi rûmet e.

**22.** Di Lewhu'l Mehfûz de ye.



## 86. SÛREYA TÂRIQ

*(Sûreya Târiq, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û hivdeh (17) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya heştê û şeşemîn e. Sûreya Tariq, navê xwe ji peyva "Tariq" sitendîye ku di ayeta destpêkê de dibore û tê ser maneya sitêrka geş û rewnaq. Sûre, bi qesema li ser vê sitêrkê dest pê dike û mijarên hebûna çavdêrekî parêzkar ya li ser her nefsê û xulîqandina însan ya ji avê û muhletdayîna ji kafiran re tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond bi asîman û bi (stêrka) Târiq (ku şevê de xuya dibe).

**2.** Tu yê ji ku bizanibî ka (stêrka) Târiq çi ye?

**3.** Ew, stêrka tarîdirîn û ronîker e.

**4.** Li ser her nefsekî muheqeq çavdêrekî parêzkar/qeydker heye.

**5.** (Herwiha) bila însan binêre ka ji çi hatîye xuliqandin?

**6.** Ji aveke ku bi şid tê avêtin hatîye xuliqandin.

**7.** (Ew,) ji navbera hestîyê piştê û perasî de derdikeve

**8.** Qet guman tune (Allah), li ser vegera wî (ji vejandina wî ya piştî mirinê re) qadir e.

**9.** Ew roj, wê hemû sir/nehênî xuya bibin.

**10.** Qet tu hêz û alîkar (wê ji însan re) tune be.

**11.** Sond bi asîmana xwedî veger (ku barana wê bênavber dubare dike) be.

**12.** Bi erda terikî (ku hêşînahîyan ew qelaştîye) sond be.

**13.** Qet guman tune ku ew (Qur'an), jihevqetîn e/gotinbêja dawî ye.

**14.** Ew ne (peyvek) bêcidîyet/henek e.

**15.** Bêguman ew, kemîn datînin.

**16.** Ez jî kemîn datînim.

**17.** Muhletê bide kafiran. (Ne zehf,) muhleteki kêm.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
سَبِّحِ اسْمَ رَبِّكَ الْاَعْلٰىۙ ﴿١﴾ اَلَّذ۪ي خَلَقَ فَسَوّٰىۙ ﴿٢﴾ وَالَّذ۪ي قَدَّرَ فَهَدٰىۙ ﴿٣﴾
وَالَّذ۪ٓي اَخْرَجَ الْمَرْعٰىۙ ﴿٤﴾ فَجَعَلَهُ غُثَٓاءً اَحْوٰىۜ ﴿٥﴾ سَنُقْرِئُكَ فَلَا تَنْسٰىۙ ﴿٦﴾
اِلَّا مَا شَٓاءَ اللّٰهُۜ اِنَّهُ يَعْلَمُ الْجَهْرَ وَمَا يَخْفٰىۜ ﴿٧﴾ وَنُيَسِّرُكَ لِلْيُسْرٰىۚ ﴿٨﴾ فَذَكِّرْ
اِنْ نَفَعَتِ الذِّكْرٰىۜ ﴿٩﴾ سَيَذَّكَّرُ مَنْ يَخْشٰىۙ ﴿١٠﴾ وَيَتَجَنَّبُهَا الْاَشْقٰىۙ ﴿١١﴾
اَلَّذ۪ي يَصْلَى النَّارَ الْكُبْرٰىۚ ﴿١٢﴾ ثُمَّ لَا يَمُوتُ ف۪يهَا وَلَا يَحْيٰىۜ ﴿١٣﴾ قَدْ اَفْلَحَ
مَنْ تَزَكّٰىۙ ﴿١٤﴾ وَذَكَرَ اسْمَ رَبِّه۪ فَصَلّٰىۜ ﴿١٥﴾ بَلْ تُؤْثِرُونَ الْحَيٰوةَ الدُّنْيَاۘ ﴿١٦﴾ وَالْاٰخِرَةُ
خَيْرٌ وَاَبْقٰىۜ ﴿١٧﴾ اِنَّ هٰذَا لَفِي الصُّحُفِ الْاُولٰىۙ ﴿١٨﴾ صُحُفِ اِبْرٰه۪يمَ وَمُوسٰى ﴿١٩﴾

سُورَةُ الْغَاشِيَةِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سِتٌّ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
هَلْ اَتٰيكَ حَد۪يثُ الْغَاشِيَةِۜ ﴿١﴾ وُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ خَاشِعَةٌۙ ﴿٢﴾ عَامِلَةٌ نَاصِبَةٌۙ ﴿٣﴾
تَصْلٰى نَارًا حَامِيَةًۙ ﴿٤﴾ تُسْقٰى مِنْ عَيْنٍ اٰنِيَةٍۜ ﴿٥﴾ لَيْسَ لَهُمْ طَعَامٌ
اِلَّا مِنْ ضَر۪يعٍۙ ﴿٦﴾ لَا يُسْمِنُ وَلَا يُغْن۪ي مِنْ جُوعٍۜ ﴿٧﴾ وُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ نَاعِمَةٌۙ ﴿٨﴾
لِسَعْيِهَا رَاضِيَةٌۙ ﴿٩﴾ ف۪ي جَنَّةٍ عَالِيَةٍۙ ﴿١٠﴾ لَا تَسْمَعُ ف۪يهَا لَاغِيَةًۜ ﴿١١﴾

## 87. SÛREYA A'LÂ

*(Sûreya A'lâ, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û nozdeh (19) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya heştê û heftemîn e. Peyva A'lâ tê ser maneya berz/bilind. Ev peyv di ayeta yekemîn de dibore û bûye navê sûreyê. Sûre, bi tesbîhkirina navê Rabbê xwe berz/bilind dest pê dike. Di vê sûreyê de berzbûn û qûdreta Allah (ac) û rewşa kafiran û hêsanîya xwendin û jiber kirina Qur'anê tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Navê Rabbê xwe yê berz/bilind tesbîh bike.
**2.** Ew e ku; xuliqandîye û sererast kiriye.
**3.** Wî pîva (teqdîr kir) û rê nîşan dayê.
**4.** Ew e ku; mêrgên/çêreyên (kipîkesk) derxist.
**5.** (Paşê wan hêşînahîyan) dike pûşên reş û rizîyayî.
**6.** Em ê bi te bidin xwendin û tu yê jî ji bîr nekî.
**7.** Tiştê ku Allah daxwaz dike ne tê de. Lewre ew, bi ya eşkere jî û bi ya veşartî jî dizane.
**8.** Em ê ya herî hêsan (amelên salih) bi te hêsan bikin.
**9.** Eger bi kêr bê şîretan bike/bi bîr bine!
**10.** Ew ê ditirse, şîret digire.
**11.** Lê ew ê bedbext/dilneşad, xwe jê dûr dike.
**12.** Ew ê bikeve agirê herî mezin.
**13.** Paşê li wê derê ne dimire û ne jî dijî.
**14.** Muheqeq ew ê ku xwe paqij kiriye gihîştîye rizgarîyê.
**15.** Û ew ê bi zikirkirina navê Rabbê te nimêj dike.
**16.** (Nexêr, ne wisan e!) Berevajî hûn, jiyana dinyayê tercîh dikin/çêtir digirin!
**17.** (Bi rastî) axîret, herî bixêrtir û mayînde ye.
**18.** Bêguman ev (doktrînên hanê), di suhûfên/di rûpelên berê de jî heye.
**19.** Di suhûfên/di rûpelên Îbrahîm û Mûsa de.

## 88. SÛREYA XAŞIYE

*(Sûreya Xaşiye, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û bîst û şeş (26) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya heştê û heştemîn e. Xaşiye, navek ji navên qiyametê ye. Sûre jî navê xwe ji vê peyvê sitendîye. Heft ayetên ku di destpêkê de li pey hev re tên behsa rewşa ehlê cehennemê; neh ayetên pey wan re tên jî behsa rewşa ehlê cennetê dike. Wekî din mijarên qiyamet û tiştên pêwist e ku mirov îbret ji wan bigire vedibêje.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ma agahîya (qiyametê) ya ku her tiştî digire û dinuximîne ji te re hat?
**2.** Ew roj, (hinek) rû di nav tirs û kindê de/zilletê de ne.
**3.** Xebitîye/amel kiriye û betilîye/westîyaye.
**4.** Wê bikeve agirê har.
**5.** Ji (ava) kanîyeke pirzêde kelijî tên vexwarin.
**6.** Ji bo wan ji sitirîya "darî" (ya bi jehr û bêhn pîs û qirik diqelişîne) pê ve xwarinek tune.
**7.** Ne têr dike û ne jî birçîbûnê diborîne.
**8.** (Hinek) rû jî hene ku, di nîmetan (de bextewar in).
**9.** Ji ber xebata xwe (ji ya ku bi dest xistîye ) razî ye/xoşnûd e.
**10.** Di cennetekî berz/bilind de ye.
**11.** Li wê derê peyveke pûç/bê feyde nabihîze.

فِيهَا عَيْنٌ جَارِيَةٌ ﴿١٢﴾ فِيهَا سُرُرٌ مَرْفُوعَةٌ ﴿١٣﴾ وَاَكْوَابٌ مَوْضُوعَةٌ ﴿١٤﴾
وَنَمَارِقُ مَصْفُوفَةٌ ﴿١٥﴾ وَزَرَابِيُّ مَبْثُوثَةٌ ﴿١٦﴾ اَفَلَا يَنْظُرُونَ اِلَى الْاِبِلِ كَيْفَ
خُلِقَتْ ﴿١٧﴾ وَاِلَى السَّمَاءِ كَيْفَ رُفِعَتْ ﴿١٨﴾ وَاِلَى الْجِبَالِ كَيْفَ
نُصِبَتْ ﴿١٩﴾ وَاِلَى الْاَرْضِ كَيْفَ سُطِحَتْ ﴿٢٠﴾ فَذَكِّرْ اِنَّمَا اَنْتَ مُذَكِّرٌ ﴿٢١﴾
لَسْتَ عَلَيْهِمْ بِمُصَيْطِرٍ ﴿٢٢﴾ اِلَّا مَنْ تَوَلّٰى وَكَفَرَ ﴿٢٣﴾ فَيُعَذِّبُهُ اللّٰهُ
الْعَذَابَ الْاَكْبَرَ ﴿٢٤﴾ اِنَّ اِلَيْنَا اِيَابَهُمْ ﴿٢٥﴾ ثُمَّ اِنَّ عَلَيْنَا حِسَابَهُمْ ﴿٢٦﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالْفَجْرِ ﴿١﴾ وَلَيَالٍ عَشْرٍ ﴿٢﴾ وَالشَّفْعِ وَالْوَتْرِ ﴿٣﴾ وَالَّيْلِ اِذَا يَسْرِ ﴿٤﴾
هَلْ ف۪ي ذٰلِكَ قَسَمٌ لِذ۪ي حِجْرٍ ﴿٥﴾ اَلَمْ تَرَ كَيْفَ فَعَلَ رَبُّكَ
بِعَادٍ ﴿٦﴾ اِرَمَ ذَاتِ الْعِمَادِ ﴿٧﴾ اَلَّت۪ي لَمْ يُخْلَقْ مِثْلُهَا فِي الْبِلَادِ ﴿٨﴾
وَثَمُودَ الَّذ۪ينَ جَابُوا الصَّخْرَ بِالْوَادِ ﴿٩﴾ وَفِرْعَوْنَ ذِي
الْاَوْتَادِ ﴿١٠﴾ اَلَّذ۪ينَ طَغَوْا فِي الْبِلَادِ ﴿١١﴾ فَاَكْثَرُوا ف۪يهَا الْفَسَادَ ﴿١٢﴾
فَصَبَّ عَلَيْهِمْ رَبُّكَ سَوْطَ عَذَابٍ ﴿١٣﴾ اِنَّ رَبَّكَ لَبِالْمِرْصَادِ ﴿١٤﴾

**12.** Li wê derê kanîyek heye ku (bênavber) diherike.
**13.** Li wê derê textên bilindkirî hene.
**14.** Qedehên/qabên bicihbûyî,
**15.** Balgehên li cem hev rêzkirî
**16.** Xalîçeyên/mehfûrên bi rûmet ên vekirî û raxistî...
**17.** Ma lê nanêrin ka deve çawa hatîye xuliqandin?
**18.** Asîman çawa hatîye bilindkirin?
**19.** Çiya çawa (bicih bûyî) hatine çikandin?
**20.** Erd çawa hatîye raxistin?
**21.** Bi bîr bixe! Tu bitenê bi bîr dixî/şîretkar î.
**22.** Tu nikarî bi zorê berê wan bidî (îman û amelên salih).
**23.** (Lê belê) kî rû vegerîne û înkar bike,
**24.** Allah, wê bi ezabekî herî mezin ezab lê bike.
**25.** Qet guman tune, vegera wan bi bal me ve ye.
**26.** Paşê, hisabdîtina wan jî li ser me ye.



## 89. SÛREYA FECR

*(Sûreya Fecr, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sî (30) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya heştê û nehemîn e. Di ayeta yekemîn de qesem li ser peyva "Fecr" tê kirin û sûre bi vê navê hatîye navandin. Fecr, tê ser maneya ronahîya berê sibehê. Sûreya Fecr bi gelemperî hin qiseyên wekî qewmê Ad û Semûd û Îrem û Firewn û ligel vê beralîbûna însan bal bi xerabîyê ve û encamên vê rewşê û axîret hatîye vegotin.*



*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond be bi fecrê/bi şefeqê.
**2.** Û bi deh şevan (li deh rojên pêşîn yên meha Zilhicceyê),
**3.** Bi cot û bi ferê,
**4.** Dema ku diherike û diçe bi şevê.
**5.** Ji bo yê aqilmend re di van ên hejmartî de sond heye, ne wisa?
**6.** Ma te nedît ku Rabbê te li (qewmê) Ad çawa kir?
**7.** Li bajarê Îrem a xwedî sitûn (ên bilind û zexm).
**8.** Yekî wekî wî li welatan nehatîye xuliqandin.
**9.** Û bi Semûd, ew ên ku di newalan de bi qewartina zinaran (avahîyên bê mîsal lê dikirin),
**10.** Û bi Firewnê xwedî qazixan (pîramîd û artêşan),
**11.** Ew in ku li welatan bitirtî (û taxûtî) kirin.
**12.** Li wê derê fesadê zêdetir kirin.
**13.** Rabbê te, qemçîya ezabê bi ser wan de barand.
**14.** Lewre Rabbê te, çavdêrîyê dike.

فَاَمَّا الْاِنْسَانُ اِذَا مَا ابْتَلٰيهُ رَبُّهُ فَاَكْرَمَهُ وَنَعَّمَهُ فَيَقُولُ رَبّ۪ٓي
اَكْرَمَنِۜ ﴿١٥﴾ وَاَمَّٓا اِذَا مَا ابْتَلٰيهُ فَقَدَرَ عَلَيْهِ رِزْقَهُ فَيَقُولُ رَبّ۪ٓي اَهَانَنِۚ ﴿١٦﴾
كَلَّا بَلْ لَا تُكْرِمُونَ الْيَت۪يمَۙ ﴿١٧﴾ وَلَا تَحَٓاضُّونَ عَلٰى طَعَامِ الْمِسْك۪ينِۙ ﴿١٨﴾
وَتَأْكُلُونَ التُّرَاثَ اَكْلًا لَمًّاۙ ﴿١٩﴾ وَتُحِبُّونَ الْمَالَ حُبًّا جَمًّاۜ ﴿٢٠﴾
كَلَّٓا اِذَا دُكَّتِ الْاَرْضُ دَكًّا دَكًّاۙ ﴿٢١﴾ وَجَٓاءَ رَبُّكَ وَالْمَلَكُ صَفًّا صَفًّاۚ ﴿٢٢﴾
وَج۪ٓيءَ يَوْمَئِذٍ بِجَهَنَّمَ يَوْمَئِذٍ يَتَذَكَّرُ الْاِنْسَانُ وَاَنّٰى لَهُ الذِّكْرٰىۜ ﴿٢٣﴾
يَقُولُ يَا لَيْتَن۪ي قَدَّمْتُ لِحَيَات۪يۚ ﴿٢٤﴾ فَيَوْمَئِذٍ لَا يُعَذِّبُ عَذَابَهُٓ اَحَدٌۙ ﴿٢٥﴾
وَلَا يُوثِقُ وَثَاقَهُٓ اَحَدٌۜ ﴿٢٦﴾ يَٓا اَيَّتُهَا النَّفْسُ الْمُطْمَئِنَّةُۗ ﴿٢٧﴾ اِرْجِع۪ٓي
اِلٰى رَبِّكِ رَاضِيَةً مَرْضِيَّةًۚ ﴿٢٨﴾ فَادْخُل۪ي ف۪ي عِبَاد۪يۙ ﴿٢٩﴾ وَادْخُل۪ي جَنَّت۪ي ﴿٣٠﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

لَٓا اُقْسِمُ بِهٰذَا الْبَلَدِۙ ﴿١﴾ وَاَنْتَ حِلٌّ بِهٰذَا الْبَلَدِۙ ﴿٢﴾ وَوَالِدٍ وَمَا وَلَدَۙ ﴿٣﴾
لَقَدْ خَلَقْنَا الْاِنْسَانَ ف۪ي كَبَدٍۜ ﴿٤﴾ اَيَحْسَبُ اَنْ لَنْ يَقْدِرَ عَلَيْهِ اَحَدٌۢ ﴿٥﴾
يَقُولُ اَهْلَكْتُ مَالًا لُبَدًاۜ ﴿٦﴾ اَيَحْسَبُ اَنْ لَمْ يَرَهُٓ اَحَدٌۜ ﴿٧﴾

**15.** Heçî însan dema ku Rabbê wî, ew îmtîhan bike û îkramê lê bike û nîmetan bide wî wiha dibêje: “Rabbê min (ez rûmetdar kirim û) îkram li min kir.”
**16.** Lê dema ku wî biceribîne û rizqê wî teng bike, dibêje: “Rabbê min, (bi bê rûmetkirinê) ez riswa kirim.
**17.** Qet/Tu car! (Dewlemendî û feqîrtî bitenê îmtîhanek e. Ew ên bê rûmet/riswaker ew kes ên xwedîyê van taybetîyên ha ne:) Hûn li sêwîyan îkramê/qencîyê nakin.
**18.** Hûn hevdu ji bo têrkirina feqîran teşwîq jî nakin.
**19.** Hûn mîrasa (jin û sêwîyan) qet dîqat nakin û dixwin.
**20.** Hûn hezkirineke pirzêde hez mal jî dikin.
**21.** Qet/Tu car! Gava ku erd diherife û parçe parçe dibe,
**22.** Dema Rabbê te tê û melaîket sef bi sef (rêz dibin),
**23.** Û ew roj cehennem jî tê anîn. Wê rojê însan bi bîr tîne. (Lê belê) ma wê çi feydeya vê bibîranînê jê re hebe?
**24.** Dibêje: “Xwezî min ji bo jiyana xwe hin tiştan (bikira û) li pêşîya xwe teqdîm bikira.”
**25.** Ew roj, tu kes nikare wekî ezaba (Allah) bikaribe ezab bide.
**26.** Û wekî girêdana ku ew girê dide tu kes nikare girê bide.
**27.** Ya ew nefsa mutmeîn bûye!
**28.** Wek razîbûyî û razîkirî bal bi Rabbê xwe ve vegere.
**29.** Heydê, têkeve nav evdên min.
**30.** Û bikeve cenneta min.

## 90. SÛREYA BELED

*(Sûreya Beled, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û bist (20) ayet e)*

*Di Qur’anê de sûreya notemîn e. Sûre, navê xwe ji peyva Beled sitendîye ku di ayeta ewil de dibore. Peyva “Beled” tê ser maneya Şar/Bajar. Lê di vê sûreyê de ji Beled meqset şara Mekke ye. Di sûreyê de li dinyayê di şertên zor û dijwar de welidîna însan û ji bo bûyîna însanekî kâmil divêtîya bersing kirina tengezarîyan tê vegotin. Ji însanan re şîreta alîkarî û sebir û merhamet tê kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond/Qesem be bi vî bajarî,
**2.** Û tu jî di vî bajarî de dijî.
**3.** Bi bav û bi (zarok) a di welide.
**4.** Qesem bibe ku me însan di nava zorahîyê de xuliqand. (Bi îmtîhanên zor tê ceribandin û li ber zorahîyan bisemax/qewîn e.)
**5.** (Hema wisa) ma însan zen dike ku wê tu kes qet nikaribe pê?
**6.** (Di rêya neyartîya Muhammed de) dibêje: “Min pirzêde mal xerc kir.” (Çi dibe, ku bi vê dipesine?)
**7.** Ma qey ew zen dike ku tu kes wî nabîne?

اَلَمْ نَجْعَلْ لَهُ عَيْنَيْنِۙ ﴿٨﴾ وَلِسَانًا وَشَفَتَيْنِۙ ﴿٩﴾ وَهَدَيْنَاهُ النَّجْدَيْنِۚ ﴿١٠﴾
فَلَا اقْتَحَمَ الْعَقَبَةَۘ ﴿١١﴾ وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا الْعَقَبَةُۜ ﴿١٢﴾ فَكُّ رَقَبَةٍۙ ﴿١٣﴾
اَوْ اِطْعَامٌ فٖي يَوْمٍ ذٖي مَسْغَبَةٍۙ ﴿١٤﴾ يَتٖيمًا ذَا مَقْرَبَةٍۙ ﴿١٥﴾ اَوْ مِسْكٖينًا
ذَا مَتْرَبَةٍۜ ﴿١٦﴾ ثُمَّ كَانَ مِنَ الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَتَوَاصَوْا بِالصَّبْرِ
وَتَوَاصَوْا بِالْمَرْحَمَةِۜ ﴿١٧﴾ اُولٰٓئِكَ اَصْحَابُ الْمَيْمَنَةِۜ ﴿١٨﴾ وَالَّذٖينَ
كَفَرُوا بِاٰيَاتِنَا هُمْ اَصْحَابُ الْمَشْـَٔمَةِۜ ﴿١٩﴾ عَلَيْهِمْ نَارٌ مُؤْصَدَةٌ ﴿٢٠﴾

سُورَةُ الشَّمْسِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسَ عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
وَالشَّمْسِ وَضُحٰيهَاۙ ﴿١﴾ وَالْقَمَرِ اِذَا تَلٰيهَاۙ ﴿٢﴾ وَالنَّهَارِ اِذَا جَلّٰيهَاۙ ﴿٣﴾ وَالَّيْلِ
اِذَا يَغْشٰيهَاۙ ﴿٤﴾ وَالسَّمَٓاءِ وَمَا بَنٰيهَاۙ ﴿٥﴾ وَالْاَرْضِ وَمَا طَحٰيهَاۙ ﴿٦﴾ وَنَفْسٍ
وَمَا سَوّٰيهَاۙ ﴿٧﴾ فَاَلْهَمَهَا فُجُورَهَا وَتَقْوٰيهَاۙ ﴿٨﴾ قَدْ اَفْلَحَ مَنْ زَكّٰيهَاۙ ﴿٩﴾
وَقَدْ خَابَ مَنْ دَسّٰيهَاۜ ﴿١٠﴾ كَذَّبَتْ ثَمُودُ بِطَغْوٰيهَاۙ ﴿١١﴾ اِذِ انْبَعَثَ اَشْقٰيهَاۙ ﴿١٢﴾
فَقَالَ لَهُمْ رَسُولُ اللّٰهِ نَاقَةَ اللّٰهِ وَسُقْيٰيهَاۗ ﴿١٣﴾ فَكَذَّبُوهُ فَعَقَرُوهَاۙ
فَدَمْدَمَ عَلَيْهِمْ رَبُّهُمْ بِذَنْبِهِمْ فَسَوّٰيهَاۙ ﴿١٤﴾ وَلَا يَخَافُ عُقْبٰيهَا ﴿١٥﴾

**8.** Ma qey me du çav nedanê? (Ew Allahê ku çav danê, helbet karûkirinên wî jî dibîne.)
**9.** Zimanek û du lêv.
**10.** Me du rê nîşanî wî dane.
**11.** Lê ew bi wê pala asê/aqebe ve (ne ji ber amelên salih) hate avêtin.
**12.** Tu yê ji ku derê bizanibî ka pala asê/aqebe çi ye?
**13.** Ew, azadkirina koleyan e.
**14.** An jî di roja birçîbûnê de têrkirin e.
**15.** Sêwîyekî nêz (eqrebe),
**16.** An jî miskînekî/feqîrekî hewcedar (destteng) ê li erdêmayî.
**17.** Paşê jî bibe ji wan ên ku îman anîne û qewîtîya sebr û merhametê li hevdu dikin.
**18.** Ha evana, Eshabu'l Meymene ne (ku defterên wan ên amelê ji milê rastê ve tên dayîn).
**19.** Ew ên ayetên me diderewînin jî ewana Eshabu'l Meş'eme ne (ku defterên wan ên amelê ji milê çepê ve tên dayîn).
**20.** Li ser wan agirekî ku derîyên wî (bi awayê nayê vekirin) kilîtkirî heye.



## 91. SÛREYA ŞEMS

*(Sûreya Şems, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pazdeh (15) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya not û yekemîn e. Peyva "Şems" di destpêka ayeta ewil de derbas dibe û tê ser maneya Roj/Tav û sûre jî navê xwe ji vê peyvê sitendîye. Sûre, bi ayetên pey hev re bi qesema li ser tav û hîv û şev û roj erd û esman dest pê dike. Di sûreya Şems de qudreta Allah (ac) û rizgarîya qencîkaran û zîyandarîya xeraban û serpêhatîya qewmê Semûd ku pêxemberê xwe derewandibûn û di înkara xwe de asê bûn tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond be bi rojê û ronahîya wê.
**2.** Dema ku li pey rojê derdikeve bi hîvê,
**3.** Dema ku wê derdixe holê bi rojê,
**4.** Dema ku wê dinuximîne (û dipêçe) bi şevê,
**5.** Bi asîman û bi ya ku ew ava kiriye,
**6.** Bi erdê û bi wî yê ku ew ji her alî ve raxistîye,
**7.** Bi nefsê û bi yê ku ew sererast kiriye,
**8.** Bi wî ya ku îlhama xerabîyê û teqwayê lê kiriye (sond bi van hemûyan be ku),
**9.** Ew ê (nefsa) xwe paqij dike, teqez ew gihiştîye rizgarîyê.
**10.** Ew ê (bi kufr û masîyetê) nuxamtîye jî teqez zerar kiriye.
**11.** (Qewmê) Semûd, ji ber bitirtîya xwe derewandin.
**12.** Dema ew ên herî bextbireş tevgerîyan,
**13.** Allah û Rasûlê wî ji wan re gotin: "Hûn hay ji deveya Allah û dora ava wê hebin."
**14.** Ew derewandin û (deve) serjê kirin. Rabbê wan, ji ber gunehên wan, ezabekî ku koka wan diqelîne ew helak kirin û wê derê ripîrast/bi erdê re yeknesak kir.
**15.** Û (Allah), ji encama vê natirse.

## 92. SÛREYA LEYL

*(Sûreya Leyl, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û bist û yek (21) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya not û duyemîn e. Navê xwe ji peyva "Leyl" sitendîye ku di ayeta yekemîn de dibore û tê ser maneya şev. Di sûreya Leyl de comerdî tê pesinandin û qesîsî tê zemkirin û şîreta xerckirina mal û serwetên xwe ya di rêya Allah (ac) de tê kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Dema ku dipêçe û dinuximîne bi şevê.
**2.** Dema ku ronahî dibe bi rojê,
**3.** Bi xaliqê nêr û mê.
**4.** Bêguman xebatên we cûr bi cûr in. (Hinek ji bo cennetê hinek jî ji bo dojehê dixebitin.)
**5.** Kî jî bide û (ji Allah) bitirse û xwe biparêze,
**6.** Û ya herî xweşik (Laîlâheîllallah) tesdîq bike,
**7.** Em jî jê re ya herî hêsan e (amelê salih û cennetê) hêsan dikin.
**8.** Kî jî qesîsî bike û wekî ku ne hewcedar (ê Allah) be tevbigere,
**9.** Û ya herî xweşik (Laîlâheîllallah) biderewîne,
**10.** Em jî jê re ya herî zor (masîyet û dojehê) hêsan dikin.
**11.** Û gava ku serberjêrkî (bi dojehê ve digindire) malê wî tu feydê nade wî.
**12.** Qet guman tune hîdayet aîdê me ye.
**13.** Bêguman, dawî (axîret) jî û pêşîn (dinya) jî aîdê me ye.
**14.** Min hûn bi agirekî ku biqijeqij dişewite hişyar kir.
**15.** Ji xeynî ew ên bextbireş pê ve tu kes nakeve.
**16.** Ew ê ku; derewandîye û rû vegerandîye.
**17.** Ew ên (ji Allah) ditirsin û xwe diparêzin (xwedî teqwa) jê dûr tên girtin.
**18.** Ew e ku; xwe bi dayîna malê xwe paqij dike.
**19.** Li cem wî nîmetê/deynê qet tu kesî tune ku berdêla wî bê dayîn hebe.

سُورَةُ الَّيْلِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ إِحْدٰى وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالَّيْلِ اِذَا يَغْشٰىۙ ﴿١﴾ وَالنَّهَارِ اِذَا تَجَلّٰىۙ ﴿٢﴾ وَمَا خَلَقَ الذَّكَرَ وَالْاُنْثٰىۙ ﴿٣﴾
اِنَّ سَعْيَكُمْ لَشَتّٰىۜ ﴿٤﴾ فَاَمَّا مَنْ اَعْطٰى وَاتَّقٰىۙ ﴿٥﴾ وَصَدَّقَ بِالْحُسْنٰىۙ ﴿٦﴾
فَسَنُيَسِّرُهُ لِلْيُسْرٰىۜ ﴿٧﴾ وَاَمَّا مَنْ بَخِلَ وَاسْتَغْنٰىۙ ﴿٨﴾ وَكَذَّبَ
بِالْحُسْنٰىۙ ﴿٩﴾ فَسَنُيَسِّرُهُ لِلْعُسْرٰىۜ ﴿١٠﴾ وَمَا يُغْن۪ي عَنْهُ مَالُهُٓ اِذَا تَرَدّٰىۜ ﴿١١﴾
اِنَّ عَلَيْنَا لَلْهُدٰىۘ ﴿١٢﴾ وَاِنَّ لَنَا لَلْاٰخِرَةَ وَالْاُولٰى ﴿١٣﴾ فَاَنْذَرْتُكُمْ نَارًا تَلَظّٰىۚ ﴿١٤﴾
لَا يَصْلٰيهَٓا اِلَّا الْاَشْقٰىۙ ﴿١٥﴾ اَلَّذ۪ي كَذَّبَ وَتَوَلّٰىۜ ﴿١٦﴾ وَسَيُجَنَّبُهَا
الْاَتْقٰىۙ ﴿١٧﴾ اَلَّذ۪ي يُؤْت۪ي مَالَهُ يَتَزَكّٰىۚ ﴿١٨﴾ وَمَا لِاَحَدٍ عِنْدَهُ
مِنْ نِعْمَةٍ تُجْزٰىۙ ﴿١٩﴾ اِلَّا ابْتِغَٓاءَ وَجْهِ رَبِّهِ الْاَعْلٰىۚ ﴿٢٠﴾ وَلَسَوْفَ يَرْضٰى ﴿٢١﴾

سُورَةُ الضُّحٰى
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ إِحْدٰى عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالضُّحٰىۙ ﴿١﴾ وَالَّيْلِ اِذَا سَجٰىۙ ﴿٢﴾ مَا وَدَّعَكَ رَبُّكَ وَمَا قَلٰىۜ ﴿٣﴾

(Qencîyên kiriye ne ji bo ku di bin minnetan de bihêle an jî di berdêla spasîyekî de dike.)
**20.** (Berevajî) ji bo razîbûna Rabbê berz/bilind bi dest bixe (dike).
**21.** Qet tu guman tune, di pêş de (bi ew xelata ku Allah daye) wê razî bibe.

## 93. SÛREYA DÛHÂ

*(Sûreya Dûhâ, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û yazdeh (11) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya not û sêyemîn e. Dûhâ, tê ser maneya berbang/danê sibehê. Sûre, navê xwe ji ayeta yekemîn û ji vê peyvê sitendîye û bi sonda bi dûhâyê/bi danê sibehê dest pê dike. Ji sûreyê fêm dibe ku nîmetên Allah (ac) yên piştî nubûwetê ya li ser Rasûlullah (ass) ji yên berîya nubûwetê herî zêdetir in ku qethîyen nayên qiyas kirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm (dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond be bi dûhâyê/danê sibehê,
**2.** Û dema dinuximîne şevê.
**3.** Rabbê te terka te nekiriye û ji te nexeyîdîye.

وَلَلْاٰخِرَةُ خَيْرٌ لَكَ مِنَ الْاُو۫لٰىۜ ﴿٤﴾ وَلَسَوْفَ يُعْط۪يكَ
رَبُّكَ فَتَرْضٰىۜ ﴿٥﴾ اَلَمْ يَجِدْكَ يَت۪يمًا فَاٰوٰىۖ ﴿٦﴾ وَوَجَدَكَ ضَٓالًّا
فَهَدٰىۖ ﴿٧﴾ وَوَجَدَكَ عَٓائِلًا فَاَغْنٰىۜ ﴿٨﴾ فَاَمَّا الْيَت۪يمَ فَلَا تَقْهَرْۜ ﴿٩﴾
وَاَمَّا السَّٓائِلَ فَلَا تَنْهَرْۜ ﴿١٠﴾ وَاَمَّا بِنِعْمَةِ رَبِّكَ فَحَدِّثْ ﴿١١﴾

سُورَةُ الْاِنْشِرَاحِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانِي اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
اَلَمْ نَشْرَحْ لَكَ صَدْرَكَۙ ﴿١﴾ وَوَضَعْنَا عَنْكَ وِزْرَكَۙ ﴿٢﴾ اَلَّذ۪ٓي اَنْقَضَ
ظَهْرَكَۙ ﴿٣﴾ وَرَفَعْنَا لَكَ ذِكْرَكَۜ ﴿٤﴾ فَاِنَّ مَعَ الْعُسْرِ يُسْرًاۙ ﴿٥﴾ اِنَّ مَعَ
الْعُسْرِ يُسْرًاۜ ﴿٦﴾ فَاِذَا فَرَغْتَ فَانْصَبْۙ ﴿٧﴾ وَاِلٰى رَبِّكَ فَارْغَبْ ﴿٨﴾

سُورَةُ التّ۪ينِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانِي اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالتّ۪ينِ وَالزَّيْتُونِۙ ﴿١﴾ وَطُورِ س۪ين۪ينَۙ ﴿٢﴾ وَهٰذَا الْبَلَدِ الْاَم۪ينِۙ ﴿٣﴾
لَقَدْ خَلَقْنَا الْاِنْسَانَ ف۪ٓي اَحْسَنِ تَقْو۪يمٍۘ ﴿٤﴾ ثُمَّ رَدَدْنَاهُ اَسْفَلَ سَافِل۪ينَۙ ﴿٥﴾

**4.** Bêguman ji bo te axîret ji dinyayê herî bixêrtir e.
**5.** Helbet Rabbê te wê bide te û tu yê jî razî bibî.
**6.** Ma dema ku tu sêwî bûyî, wî tu nedît û nehewand?
**7.** Ma dema te (bi Kitêb û îmanê) nizanîbû wî rêya rast nîşanî te neda?
**8.** Ma dema ku tu feqîr bûyî, wî tu dewlemend nekir?
**9.** Di wê rewşê de, tu kesê sêwî neqehirîne/kêm nebîne!
**10.** Û tu kesên daxwazker neazirîne/erzê wan neşikêne!
**11.** Û nîmetên Rabbê xwe vebibêje.



## 94. SÛREYA ÎNŞÎRÂH

*(Sûreya Înşîrâh, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heşt (8) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya not û çaremîn e. Di sûreya Înşîrâh de li ser teblîxa îslamê li dij tengezarîyên ku Rasûlullah (ass) rû bi rû mabû de bi alîkarî û firehîyên hatine dayîn û teselîya Rabbanî hatîye vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ma qey me singa te (ji bo hîdayet û xêrê musexer û) fireh nekir? (Bnr. 6/En'âm, 125)
**2.** Me (xetayên berîya nûbûwetê û barê nûbûwetê ya) giran ji ser te ranekir?
**3.** Heta ku ew bar, pişta te xistibû ber te.
**4.** Me navûdengê te berz/bilind nekir?
**5.** Qet guman tune, ligel zorahîyê hêsanî heye.
**6.** (Belê,) ligel zorahîyê hêsanî heye.
**7.** (Herwiha) dema ku tu vala mayî, (bi îbadet û taatê) bibetile/biweste.
**8.** Û bitenê ji Rabbê xwe re rexbet bike/berê xwe bidê.



## 95. SÛREYA TÎN

*(Sûreya Tîn, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heşt (8) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya not û pêncemîn e. Sûreya Tîn, navê xwe ji peyva "Tîn" ku di ayeta yekemîn de dibore sitendîye. Tîn, tê ser maneya hejîr. Di vê sûreyê de li ser hin heyînan qesem tê kirin ku însan di sûretekî herî xweşik de hatîye xuliqandin. Wekî din mijara mukâfata kesên mûmîn û salih û mijara ku Allah (ac) hakimê hakiman e/herî xweşiktirê hakiman e hatîye vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond be bi hejîr û zeytûnê,
**2.** Bi çiyayê Tûr a li Sînayê,
**3.** Û bi vî bajarê ewledar.
**4.** Qesem bibe ku, me însan di suretekî herî xweşik de xuliqand.
**5.** Paşê me ew qulibandîye esfele's-safilînê (jêrtirînê jêran).

اِلَّا الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ فَلَهُمْ اَجْرٌ غَيْرُ مَمْنُونٍ ۜ ﴿٦﴾
فَمَا يُكَذِّبُكَ بَعْدُ بِالدّٖينِ ﴿٧﴾ اَلَيْسَ اللّٰهُ بِاَحْكَمِ الْحَاكِمٖينَ ﴿٨﴾

**6.** Ew ên îman anîne û amelên salih kirine ne tê de. Ji bo wan xelateke bênavber heye.

**7.** (Ya însan!) Piştî vêya ma ew çi tişte ku dîn/hisab bi te dide derewandin?

**8.** Ma qey Allah, ne hakimê hakiman/herî xweşiktirê hakiman e? (Bnr. 12/Yûsuf, 40)

سُورَةُ الْعَلَقِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ تِسْعَ عَشْرَةَ اٰيَةً

## 96. SÛREYA ALAQ

*(Sûreya Alaq, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û nozdeh (19) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya not û şeşemîn e. Sûreya Alaq, navê xwe ji peyva Alaq sitendîye ku tê ser maneya embriyo/gilêya xwînê. Di Qur'anê de ayetên destpêka wehîyê ku ewil nazil bûne pênc (1-5) ayetên sûreya Alaq in. Sûre bi emrê "Îqra/Bixwîne" dest pê dike. Ev jî giringîya xwendina bi navê Rabbê xaliq rave û qewîn dike.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
اِقْرَاْ بِاسْمِ رَبِّكَ الَّذٖى خَلَقَ ۚ ﴿١﴾ خَلَقَ الْاِنْسَانَ مِنْ عَلَقٍ ۚ ﴿٢﴾ اِقْرَاْ
وَرَبُّكَ الْاَكْرَمُ ۙ ﴿٣﴾ اَلَّذٖى عَلَّمَ بِالْقَلَمِ ۙ ﴿٤﴾ عَلَّمَ الْاِنْسَانَ
مَا لَمْ يَعْلَمْ ۜ ﴿٥﴾ كَلَّٓا اِنَّ الْاِنْسَانَ لَيَطْغٰىٓ ۙ ﴿٦﴾ اَنْ رَاٰهُ اسْتَغْنٰى ۜ ﴿٧﴾
اِنَّ اِلٰى رَبِّكَ الرُّجْعٰى ۜ ﴿٨﴾ اَرَاَيْتَ الَّذٖى يَنْهٰى ۙ ﴿٩﴾ عَبْدًا اِذَا صَلّٰى ۜ ﴿١٠﴾
اَرَاَيْتَ اِنْ كَانَ عَلَى الْهُدٰىٓ ۙ ﴿١١﴾ اَوْ اَمَرَ بِالتَّقْوٰى ۜ ﴿١٢﴾
اَرَاَيْتَ اِنْ كَذَّبَ وَتَوَلّٰى ۜ ﴿١٣﴾ اَلَمْ يَعْلَمْ بِاَنَّ اللّٰهَ يَرٰى ۜ ﴿١٤﴾ كَلَّا
لَئِنْ لَمْ يَنْتَهِ لَنَسْفَعًا بِالنَّاصِيَةِ ۙ ﴿١٥﴾ نَاصِيَةٍ كَاذِبَةٍ خَاطِئَةٍ ۚ ﴿١٦﴾ فَلْيَدْعُ
نَادِيَهُ ۙ ﴿١٧﴾ سَنَدْعُ الزَّبَانِيَةَ ۙ ﴿١٨﴾ كَلَّا ۜ لَا تُطِعْهُ وَاسْجُدْ وَاقْتَرِبْ ﴿١٩﴾

**1.** Bi navê Rabbê xwe yê xuliqandîye, bixwîne!

**2.** Ew e, yê ku însan ji gilêya/gincîya xwînê xuliqand.

**3.** Bixwîne! Rabbê te (yê ku herî comerd û îhsana wî pirzêde) Ekrem e.

**4.** Ew e ku; (nivîsa) bi qelemê hîn kirîye.

**5.** Ya ku pê nizanî bû (wî) hînî însan kiriye.

**6.** Qet/Tu car! Qet guman tune, însan bitir dibe.

**7.** Dema ku xwe wek mustexnî (wekî ku ne hewcedarê tu kesî ye û têra xwe dike) dibîne.

**8.** Qet guman tune, veger bi bal Rabbê te ve ye.

**9.** Ma te wî yê astengker dît?

**10.** Wî evdê nimêjker (ku ji nimêjê men dike).

**11.** De ka bêje, eger ew evd li ser rêya rast be?

**12.** An jî ew, emrê teqwayê bike?

**13.** De ka bêje, an (ev astengker) derewandibe û rû vegerandibe?

**14.** Ma ew nizane ku Allah (wî) dibîne

**15.** Qet/Tu car! Eger ew dev ji vêya bernede, bêşik em ê bi perçema wî bigirin.

**16.** Bi perçema (wî) yê gunehkar û derewkar.

**17.** Ew jî bila gazî heval û civata derdora xwe bike.

**18.** Em ê jî gazî zebanîyan bikin.

**19.** Qet/Tu car! Îtaetî wî neke. Secde bike û xwe nêz bike.

سُورَةُ الْقَدْرِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
اِنَّٓا اَنْزَلْنَاهُ فِي لَيْلَةِ الْقَدْرِ ﴿١﴾ وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا لَيْلَةُ الْقَدْرِ ﴿٢﴾ لَيْلَةُ
الْقَدْرِ خَيْرٌ مِنْ اَلْفِ شَهْرٍ ﴿٣﴾ تَنَزَّلُ الْمَلٰٓئِكَةُ وَالرُّوحُ فِيهَا
بِاِذْنِ رَبِّهِمْ مِنْ كُلِّ اَمْرٍ ﴿٤﴾ سَلَامٌ هِيَ حَتّٰى مَطْلَعِ الْفَجْرِ ﴿٥﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
لَمْ يَكُنِ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ وَالْمُشْرِكِينَ مُنْفَكِّينَ حَتّٰى تَأْتِيَهُمُ
الْبَيِّنَةُ ﴿١﴾ رَسُولٌ مِنَ اللّٰهِ يَتْلُوا صُحُفًا مُطَهَّرَةً ﴿٢﴾ فِيهَا كُتُبٌ قَيِّمَةٌ ﴿٣﴾
وَمَا تَفَرَّقَ الَّذِينَ اُوتُوا الْكِتَابَ اِلَّا مِنْ بَعْدِ مَا جَٓاءَتْهُمُ الْبَيِّنَةُ ﴿٤﴾ وَمَٓا اُمِرُٓوا اِلَّا
لِيَعْبُدُوا اللّٰهَ مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَ حُنَفَٓاءَ وَيُقِيمُوا الصَّلٰوةَ وَيُؤْتُوا الزَّكٰوةَ وَذٰلِكَ
دِينُ الْقَيِّمَةِ ﴿٥﴾ اِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ وَالْمُشْرِكِينَ فِي نَارِ جَهَنَّمَ
خَالِدِينَ فِيهَا اُولٰٓئِكَ هُمْ شَرُّ الْبَرِيَّةِ ﴿٦﴾ اِنَّ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
اُولٰٓئِكَ هُمْ خَيْرُ الْبَرِيَّةِ ﴿٧﴾ جَزَٓاؤُهُمْ عِنْدَ رَبِّهِمْ جَنَّاتُ عَدْنٍ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا
الْاَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَٓا اَبَدًا رَضِيَ اللّٰهُ عَنْهُمْ وَرَضُوا عَنْهُ ذٰلِكَ لِمَنْ خَشِيَ رَبَّهُ ﴿٨﴾



## 97. SÛREYA QADR

*(Sûreya Qadr, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û pênc (5) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya not û heftemîn e. Ji ber ku Qûr'an di şeva Qadr de nazil bûye û sûre jî behsa vê mijarê dike bi vê navê hatîye binav kirin. Di sûreya Qadr de mijarên hanê ku Qûr'an di Leyletu'l Qadr de nazil bûye û Leyletu'l Qadr ji hezar mehan bixêrtir e û ji ber vê yekê wekî navê xwe şeveke pir bi rûmet e tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Qet guman tune, me ew (Qur'an) di Leyletu'l Qadr de nazil kiriye.

**2.** Tu yê ji ku bizanibî ka Leyletu'l Qadr çi ye?

**3.** Leyletu'l Qadr, ji hezar mehan bixêrtir e.

**4.** Melaîket û Rûh (Cibrîl), bi destûra Rabbê te ji bo her karî tê de dadikevin.

**5.** Ew, heta fecrê/berê sibehê silametî ye.



## 98. SÛREYA BEYYÎNE

*(Sûreya Beyyîne, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û heşt (8) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya not û heştemîn e. Peyva Beyyîne, tê ser maneya delîlê apaşkere ku ev peyv di dawîya ayeta ewil de dibore. Sûreya Beyyîne, mijarên kafirên ehlê kitêb û muşrîkan û wehîy û nubûwetê vedibêje. Di vê sûreyê de meqseda wehîy û nubûwetê ka çi ye û bi şandina Kitêb û pêxemberan Allah (ac) hikmetên çawa daxwaz kiriye hatîye ravekirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*




**1.** Kafirên ji Ehlê Kitêb û yên ji muşrîkan, hetanî ku delîlên eşkere ji wan re newin (ji kufr û şirkê) ne yên veqetînê bûn.

**2.** Rasûlek ku ji hêla/ji alîyê Allah ve (hatîye şandin) ... Suhûfên/rûpelên pirpaqij dixwîne.

**3.** Di nava wî de hukmên ripîrast hene.

**4.** Ew ên Kitêb ji wan re hatîye dayîn, bes piştî ku delîla eşkere ji wan re hat, ketin îxtilafê.

**5.** Hal ev e ku, ewana hatibûn fermankirin ku ew wek henîfan dîn bitenê jê re xalis bikin û îbadetê Allah bikin û nimêja xwe rasterast bikin û zekâta xwe bidin. Ha dînê rasterast ev bixwe ye.

**6.** Qet guman tune kafirên ji Ehlê Kitêb û yên ji muşrîkan, di agirê cehennemê de ne ku wê tê de bêdawî bimînin. Ha evana, di nava mexluqan de yên herî xerab/şerîr in.

**7.** Qet guman tune ew ên îman anîne û amelên salih dikin, evana di nava mexluqan de yên herî qenc/bixêr in.

**8.** Mikafata wan li cem Rabbê wan, cennetên Adn in ku di binê wan de çem diherikin û wê tê de bêdawî bimînin. Allah ji wan razî bûye û ew jî jê (ji Allah) razî bûne. Ev, ji bo wî kesî ye ku ji Rabbê xwe ditirse.

## 99. SÛREYA ZÎLZAL

*(Sûreya Zîlzal, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û heşt (8) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya not û nehemîn e. Kelîmeya Zîlzal, tê ser maneya erdhejî/zelzele. Sûre jî navê xwe ji vê peyvê sitendîye ku ev peyv dawîya ayeta yekemîn de dibore. Destpêka sûreyê bibîrxistina zelzeleyekî mezin ku wê erd bihejîne û ew roj dê hemû giranîyên xwe derxîne derve. Sûre radigihîne ku hemû însan dê piştî mirinê bivejin û mukâfat an jî cezayê amelên xwe bibinin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Erd, dema ku bi hejeke bişîdet diheje,

**2.** Û dema erd giranîyên xwe (mirîyan û madenan) derdixe,

**3.** Dema ku însan dibêje: "Çi dibe ji vê wisa?"

**4.** Ew roj erd, xeberên (wan tiştên li ser wê qewimîne) vedibêje.

**5.** Lewre Rabbê te jê re wehîy kiriye, (de "biaxive").

**6.** Ew roj însan, ji bo ku amelên wan ji wan re xuya bibe kom bi kom (ji cihên xwe) derdikevin.

**7.** Kî bi qasî misqalê zerre xêrek/qencîyek kiribe, dê wê bibîne.

**8.** Kî jî bi qasî misqalê zerre şerek/xerabîyek kiribe, dê wê bibîne.

سُورَةُ الزِّلْزَالِ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانِي اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
اِذَا زُلْزِلَتِ الْاَرْضُ زِلْزَالَهَاۙ ﴿١﴾ وَاَخْرَجَتِ الْاَرْضُ اَثْقَالَهَاۙ ﴿٢﴾
وَقَالَ الْاِنْسَانُ مَا لَهَاۚ ﴿٣﴾ يَوْمَئِذٍ تُحَدِّثُ اَخْبَارَهَاۙ ﴿٤﴾ بِاَنَّ رَبَّكَ
اَوْحٰى لَهَاۜ ﴿٥﴾ يَوْمَئِذٍ يَصْدُرُ النَّاسُ اَشْتَاتًا لِيُرَوْا اَعْمَالَهُمْۜ ﴿٦﴾ فَمَنْ
يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ خَيْرًا يَرَهُۜ ﴿٧﴾ وَمَنْ يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ شَرًّا يَرَهُ ﴿٨﴾

## 100. SÛREYA ÂDIYÂT

*(Sûreya Âdiyât, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û yazdeh (11) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sedemîn e. Navê xwe ji peyva "Âdiyât" sitendîye ku di ayeta yekemîn de dibore û tê ser maneya hespên di rêya Allah (ac) de bi helkehelk û bitews dibezin. Her pênc ayetên ewil wekî ku qiyametê bibîr bixin sehneyên şer teswîr dikin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*

*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond be bi wan hespên ku bi helkehelk dibezin.

**2.** Bi wan ên ji simên wan (ku li keviran dikevin û) çirûsk direşînin,

**3.** Bi wan ên ku di sibehê de sergirtinê/daneserê dikin,

سُورَةُ الْعَادِيَاتِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ اِحْدٰى عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالْعَادِيَاتِ ضَبْحًاۙ ﴿١﴾ فَالْمُورِيَاتِ قَدْحًاۙ ﴿٢﴾ فَالْمُغ۪يرَاتِ صُبْحًاۙ ﴿٣﴾
فَاَثَرْنَ بِه۪ نَقْعًاۙ ﴿٤﴾ فَوَسَطْنَ بِه۪ جَمْعًاۙ ﴿٥﴾ اِنَّ الْاِنْسَانَ
لِرَبِّه۪ لَكَنُودٌۚ ﴿٦﴾ وَاِنَّهُ عَلٰى ذٰلِكَ لَشَه۪يدٌۚ ﴿٧﴾ وَاِنَّهُ
لِحُبِّ الْخَيْرِ لَشَد۪يدٌۜ ﴿٨﴾ اَفَلَا يَعْلَمُ اِذَا بُعْثِرَ مَا فِي الْقُبُورِۙ ﴿٩﴾
وَحُصِّلَ مَا فِي الصُّدُورِۙ ﴿١٠﴾ اِنَّ رَبَّهُمْ بِهِمْ يَوْمَئِذٍ لَخَب۪يرٌ ﴿١١﴾

**4.** Bi wan ên toz û dûman bi hev dixin,

**5.** Bi wan ên ku noqî nava koma (dijmin) dibin. (Bi van hemûyan sond be ku;)

**6.** Bêguman însan, li dij Rabbê xwe pir nankor e.

**7.** Bi rastî, ew bixwe jî li ser vê şahid e.

**8.** Muheqeq ji ber ku dildayîyê mal e, ew pir qesîs e.

**9.** Ma nizane? Dema ku ew ên di goran de ne wê bên derketin,

**10.** Û dema tiştê ku di singan de ye derdikeve holê?

**11.** Qet guman tune ew roj, Rabbê wan ji wan agahdar e.

سُورَةُ الْقَارِعَةِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ إِحْدٰى عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
اَلْقَارِعَةُ ﴿١﴾ مَا الْقَارِعَةُ ﴿٢﴾ وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا الْقَارِعَةُ ﴿٣﴾ يَوْمَ يَكُونُ
النَّاسُ كَالْفَرَاشِ الْمَبْثُوثِ ﴿٤﴾ وَتَكُونُ الْجِبَالُ كَالْعِهْنِ الْمَنْفُوشِ ﴿٥﴾
فَاَمَّا مَنْ ثَقُلَتْ مَوَازِينُهُ ﴿٦﴾ فَهُوَ فِي عِيشَةٍ رَاضِيَةٍ ﴿٧﴾ وَاَمَّا مَنْ خَفَّتْ
مَوَازِينُهُ ﴿٨﴾ فَاُمُّهُ هَاوِيَةٌ ﴿٩﴾ وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا هِيَهْ ﴿١٠﴾ نَارٌ حَامِيَةٌ ﴿١١﴾

سُورَةُ التَّكَاثُرِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَمَانِي اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
اَلْهٰيكُمُ التَّكَاثُرُ ﴿١﴾ حَتّٰى زُرْتُمُ الْمَقَابِرَ ﴿٢﴾ كَلَّا سَوْفَ تَعْلَمُونَ ﴿٣﴾ ثُمَّ كَلَّا
سَوْفَ تَعْلَمُونَ ﴿٤﴾ كَلَّا لَوْ تَعْلَمُونَ عِلْمَ الْيَقِينِ ﴿٥﴾ لَتَرَوُنَّ الْجَحِيمَ ﴿٦﴾
ثُمَّ لَتَرَوُنَّهَا عَيْنَ الْيَقِينِ ﴿٧﴾ ثُمَّ لَتُسْـَٔلُنَّ يَوْمَئِذٍ عَنِ النَّعِيمِ ﴿٨﴾

سُورَةُ الْعَصْرِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَلَاثُ اٰيَاتٍ

## 101. SÛREYA QÂRÎA

*(Sûreya Qârîa, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û yazdeh (11) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û yekemîn e. Sûreya Qârîa, navê xwe ji peyva "Qârîa" ku di ayeta yekemîn de dibore sitendîye. Qârîa, tê ser maneya lêder an yê ku li derî dixe an jî yê ku ji erjengîyê qelban hildipetikîne. Di sûreyê de bûyerên ku wê roja qiyametê biqewimin û jiyana axîretê hatîye vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Qarîa/Qiyameta bişîdet lê dixe û dihejîne!

**2.** Çi ye ew Qarîa?

**3.** Tu yê ji ku bizanibî ka Qarîa çi ye?

**4.** Ew roj însan wekî perwaneyên (di dora ronahîyê de dizivirin) feşkilî û belawela ne.

**5.** Çiya jî wê bibin wekî hirîya rengîn ya jenandî.

**6.** Heçî ew ê mêzêna/kêşana wî giran dikêşe;

**7.** Ew, di nava jiyaneke jêrazî de ye.

**8.** Heçî ew ê mêzêna/kêşana wî sivik dikêşe;

**9.** Dêya wî/stargeha wî, kortal (dojeh) e.

**10.** Tu yê ji ku bizanibî ku ew çi ye?

**11.** Ew, agirekî sorbûyî ye.

## 102. SÛREYA TEKÂSUR

*(Sûreya Tekâsur, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heşt (8) ayet e)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û duyemîn e. Kelîmeya Tekâsur tê ser maneya pesinandina pirjimarîya mal û ewlad û eqrebeyan. Sûre radigihîne ku ev tiştên hanê ne wesîleya rûmet û şerefê ye û qet tu feyde jî nade însanan, lê belê serdestîya heqîqî roja qiyametê wê derkeve holê.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Zêdekirin/hêrsa zehfbûnê, hûn meşxûl kirin û (we ji îbadeta Allah ya bi heqî) paş ve xist.

**2.** (Ev,) hetanî serdana we ya qebristanan berdewam kir. (An jî; "We ev kar wisan pêş de bir ku heta we anî ser mijara mirîyên kî zêdetir in.")

**3.** Qet/Tu car! Hûn ê di nêz de bizanibin/fêm bikin.

**4.** Paşê bi hezar caran qet/tu car! Hûn ê di nêz de bizanibin/fêm bikin.

**5.** Qet/Tu car! (Ji hêrsa zehfbûnê xwe biparêzin.) Eger hûn bi agahîyekî qethî bizanibin,

**6.** Helbet hûn ê wê cehennemê bibînin.

**7.** Paşê helbet, hûn ê wê bi teqezî bibînin.

**8.** Piştre jî ew roj, ji wan nîmetan (ku ji we re hatîye dayîn) hûn ê bikişin hisabê.

## 103. SÛREYA ASR

*(Sûreya Asr, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sê (3) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û sêyemîn e. Asr, tê ser van maneyan: Sedsal, dema êvarê û dema dirêj. Sûre navê xwe ji vê peyvê sitendîye. Di sûreya Asr de behsa îmanê û amelên salih û şîreta heqîyê û tewsîya sebirê tê kirin û ligel vê hatîye vegotin ku ji bo însanan rizgarî/xelasî girêdayîyê van her çar xisûsan e.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Sond be bi esrê/bi demê ku,
**2.** Qet guman tune însan, di xusranê de ye.
**3.** Lê ew ên îman anîne û amelên salih dikin û ji hevdu re şîreta heqîyê û şîreta sebrê dikin ne tê de.

## 104. SÛREYA HÛMEZE

*(Sûreya Hûmeze, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û neh (9) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û çaremin e. Sûreya Hûmeze, navê xwe ji ayeta ewil sitendîye ku peyva "Hûmeze" tê de dibore û tê ser maneya kesê xeybker û zemker. Balrakêşîya qaîdeyekî giring ya di têkilîya navbera însanan de dike.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Weyl li wan kesên sebker û xeybker û bi îşaretên çav û birûyan tinazkar be!
**2.** Ew e, yê ku mal dicivîne û dubarekirî dijmêre.
**3.** Ew zen dike ku malê wî dê ew ebedî bihêle.
**4.** Qet/Tu car! Qethîyên ew ê bi Hutameyê ve bê avêtin.
**5.** Tu yê ji ku bizanibî ka ew Hutame (cehennem) çi ye?
**6.** (Ew,) agirê Allah yê pêxistî ye.
**7.** Ew e ku; ser qelban digire.
**8.** Bêguman ku derîyên wê, li ser wan qefilkirî ne. (Rev tune.)
**9.** Bi sitûnên dirêjkirî (wek girêdayî li wê derê ezab dibînin).

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالْعَصْرِۙ ﴿١﴾ اِنَّ الْاِنْسَانَ لَف۪ي خُسْرٍۙ ﴿٢﴾ اِلَّا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ وَتَوَاصَوْا بِالْحَقِّ وَتَوَاصَوْا بِالصَّبْرِ ﴿٣﴾

سُورَةُ الْهُمَزَةِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ تِسْعُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَيْلٌ لِكُلِّ هُمَزَةٍ لُمَزَةٍۙ ﴿١﴾ اَلَّذ۪ي جَمَعَ مَالًا وَعَدَّدَهُۙ ﴿٢﴾ يَحْسَبُ اَنَّ مَالَهُٓ اَخْلَدَهُۚ ﴿٣﴾
كَلَّا لَيُنْبَذَنَّ فِي الْحُطَمَةِۘ ﴿٤﴾ وَمَٓا اَدْرٰيكَ مَا الْحُطَمَةُ ﴿٥﴾ نَارُ اللّٰهِ الْمُوقَدَةُۙ ﴿٦﴾
اَلَّت۪ي تَطَّلِعُ عَلَى الْاَفْـِٔدَةِ ﴿٧﴾ اِنَّهَا عَلَيْهِمْ مُؤْصَدَةٌۙ ﴿٨﴾ ف۪ي عَمَدٍ مُمَدَّدَةٍ ﴿٩﴾

سُورَةُ الْف۪يلِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
اَلَمْ تَرَ كَيْفَ فَعَلَ رَبُّكَ بِاَصْحَابِ الْف۪يلِ ﴿١﴾ اَلَمْ يَجْعَلْ
كَيْدَهُمْ ف۪ي تَضْل۪يلٍۙ ﴿٢﴾ وَاَرْسَلَ عَلَيْهِمْ طَيْرًا اَبَاب۪يلَۙ ﴿٣﴾ تَرْم۪يهِمْ
بِحِجَارَةٍ مِنْ سِجّ۪يلٍ ﴿٤﴾ فَجَعَلَهُمْ كَعَصْفٍ مَأْكُولٍ ﴿٥﴾

## 105. SÛREYA FÎL

*(Sûreya Fîl, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pênc (5) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û pêncemîn e. Navê xwe ji ayeta ewil distîne ku tê de peyva "Fîl" dibore. Mijara sûreya Fîl, bûyera êrîşkarîya Ka'bê ye ku di dîrokê de wek "Weqaya Fîl" hatîye qeyd kirin. Rasûlullah (ass) jî ew sal hatîye dinyayê.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ma te nedît ku Rabbê te çi bi serê Eshabê Fîl anî?
**2.** Ma wî dek û dolavên wan (ên ji bo xerakirina Ka'beyê) pûç û betal nekir?
**3.** Teyrên Ebabîl bi ser wan de şand.
**4.** Kevirên ji herîya pehtî diavêtin ser wan.
**5.** Wekî gîyayê hatîye cûtin wan (belawela) kir.

سُورَةُ قُرَيْشٍ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ أَرْبَعُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
لِإٖيلَافِ قُرَيْشٍ ﴿١﴾ اٖيلَافِهِمْ رِحْلَةَ الشِّتَٓاءِ وَالصَّيْفِ ﴿٢﴾ فَلْيَعْبُدُوا رَبَّ
هٰذَا الْبَيْتِ ﴿٣﴾ اَلَّذٖٓى اَطْعَمَهُمْ مِنْ جُوعٍ وَاٰمَنَهُمْ مِنْ خَوْفٍ ﴿٤﴾

سُورَةُ الْمَاعُونِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سَبْعُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
اَرَاَيْتَ الَّذٖى يُكَذِّبُ بِالدّٖينِ ﴿١﴾ فَذٰلِكَ الَّذٖى يَدُعُّ الْيَتٖيمَ ﴿٢﴾
وَلَا يَحُضُّ عَلٰى طَعَامِ الْمِسْكٖينِ ﴿٣﴾ فَوَيْلٌ لِلْمُصَلّٖينَ ﴿٤﴾ اَلَّذٖينَ هُمْ
عَنْ صَلَاتِهِمْ سَاهُونَ ﴿٥﴾ اَلَّذٖينَ هُمْ يُرَٓاؤُنَ ﴿٦﴾ وَيَمْنَعُونَ الْمَاعُونَ ﴿٧﴾

سُورَةُ الْكَوْثَرِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ ثَلَاثُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
اِنَّٓا اَعْطَيْنَاكَ الْكَوْثَرَ ﴿١﴾ فَصَلِّ لِرَبِّكَ وَانْحَرْ ﴿٢﴾ اِنَّ شَانِئَكَ هُوَ الْاَبْتَرُ ﴿٣﴾

## 106. SÛREYA QUREYŞ

*(Sûreya Qureyş, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çar (4) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û şeşemîn e. Sûreya Qureyş navê xwe ji ayeta yekemîn distîne ku tê de behsa qebîla Qureyş tê kirin. Di vê sûreyê de lutf û kerema Allah (ac) ya li ser wan hatîye bibîr xistin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ji ber ku ew ên Qureyşî di navbera xwe de bi hogirî/bi ulfet dijîn,

**2.** (Ji bo) hêsanîya rêwingîya (bazirganîya di mehên) havîn û zivistanê de,

**3.** Bila bi îbadetkirina Rabbê vê beytê (şikur li vê nîmeta wî bikin û ew tewhîd bikin).

**4.** Ew (Rabbê ku), wan ji birçîbûnê têr kir û ew ji tirsê gihande ewlehîyê.



## 107. SÛREYA MAÛN

*(Sûreya Maûn Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û heft (7) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û heftemîn e. Navê sûreyê ji peyva "Maûn" tê ku ev kelîme di ayeta dawî de dibore û tê ser maneya "bi dayîna tiştekî alîkari kirin." Di sûreya Maûn de rewşa kesên ku dîn diderewînin û ew ên ji bo nîşandarîyê nimêj dikin û sewîyan kêm dibinin û wan têr nakin û ji bo alîkarîyê dibin asteng tê vegotin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Ma te wî yê ku (hukmên) Dîn diderewîne dît?

**2.** Ha ev e yê ku kesê sêwî dehf dide û berdide wî.

**3.** Teşwîqa têrkirina feqîran jî nake.

**4.** Weyl li wan nimêjkeran be!

**5.** Ew in ku ji nimêja xwe xafil in.

**6.** Ew in ku rîyakarîyê dikin.

**7.** Û ew, ji alîkarîya rojane re ya di nav însanan de jî dibin asteng.



## 108. SÛREYA KEWSER

*(Sûreya Kewser, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û sê (3) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û heştemîn e. Navê xwe ji ayeta pêşî ku tê de peyva "Kewser" dibore sitendîye. Di heman demê de sûreya herî kurt ya di Qur'anê de ye. Wekî sûreyên Dûhâ û Înşîrâh, sûreya Kewser jî*
*der barê Rasûlullah (ass) de ye. Muşrîkên Mekkeyê ji ber ku zarokên Rasûlullah (ass) yên kur wefat kiribûn di nav xwe de ji bo wî digotin "Tovê wî qelîya... Bêdûnde ye." Li ser vê bûyerê sûreya Kewser nazil bû.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bêguman me, Kewser (a ji çemên cennetê) daye te.

**2.** (Ji bo vêya wek şikur) ji Rabbê xwe re nimêj bike û ji bo wî qurban serjê bike.

**3.** Ya rast ev e ku; ew ê ji te dikeribe û neyartî dike (heye!) Yê ebter/bêdunde ew bixwe ye.

## 109. SÛREYA KAFÎRÛN

*(Sûreya Kafîrûn, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û şeş (6) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û nehemîn e. Di ayeta ewil de ji kafiran re xîtab tê kirin. Ji ber vê yekê wek sûreya Kafîrûn hatîye binav kirin. Ev sûre, dûrketin û beraeta ji karûkirinên muşrîkan e. Rasûlullah (ass), vê sûreyê wek "beraeta ji şirkê" dinavîne. Herwisa ev sûre di amelên ku tên kirin de emrê îxlasê li mûmînan dike.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bibêje: "Gelî kafiran!"

**2.** "Ez, ji wan tiştên ku hûn îbadetê wan dikin re îbadet nakim."

**3.** "Ji ew ê ku ez îbadetê wî dikim re hûn jî îbadet nakin."

**4.** "Ez jî ji yên ku hûn îbadetê wan dikin re îbadet nakim."

**5.** "Hûn jî ji ew ê ku ez îbadetê wî dikim re îbadet nakin."

**6.** "Dînê we ji we re û dînê min jî ji min re."

(Rasûlullah (ass), vê sûreyê wek "beraeta ji şirkê" binav kiriye. (Tirmizî, 3403) Wekî ku tê zanîn hetanî şirk neyê terkkirin û tobe neyê kirin bûyîna ji muslîman ne mimkûn e. (Bnr. 3/Âl-î Îmran, 64; 9/Tewbe, 11) Dema ligel beyana Rasûlullah (ass) li ser vê mijarê bê sekinîn, xuya dibe ku dûrbûna/teberrîya ji şirkê enceq bi van xisûsan mimkûn dibe:

a. Îtîqad anîna vê tiştê ku ew muşrîkên ji Allah (ac) re şirîk çêdikin kafir bixwe ne.

b. Xweparastina ji îbadeta wan taxûtan ku ew ji wan re îbadet dikin û dûrketina/teberrîya ji wan.

c. Bawerîya vê xisûsê; ew îdîa bikin ku îbadetê ji Allah (ac) re dikin jî ligel şirkê qet tu îbadet li îndallah/li cem Allah ne meqbûl e û ew kesê şirîk çêdike, wî bi tu awayî îbadetê Allah (ac) nekiriye.

d. Îtîqad anîna ku şirk bixwe jî dînek e û pêkanîna teberrîya ji wê dînê û ji tabîên wê dînê.)

## 110. SÛREYA NASR

*(Sûreya Nasr, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û sê (3) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û dehemîn e. Sûreya Nasr, navê xwe ji peyva Nasr ku tê ser maneya alîkar û di ayeta yekemîn de dibore sitendîye. Fetha di sûreyê de hatîye îşaret kirin qet tu gûman tune ku fetha Mekkêyê ye. Di vê sûreyê de Allah (ac) radigihîne ku alîkarîya îlahî û fetih pêk hatîye û însan kom bi kom dikevin îslamê.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Dema alîkarîya Allah û fetih hat.

**2.** Tu dibînî ku însan, fewc fewc/kom bi kom dikevin dînê Allah.

**3.** (Wê demê,) Rabbê xwe bi hamd tesbîh bike û îstîxfarê jê bixwaze. Lewre ew, (yê ku evdên xwe muweffeqê tobeyê dike û tobeyan pirzêde qebûl dike) Tewwab e.

سُورَةُ الْكَافِرُونَ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ سِتُّ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
قُلْ يَٓا اَيُّهَا الْكَافِرُونَۙ (١) لَٓا اَعْبُدُ مَا تَعْبُدُونَۙ (٢)
وَلَٓا اَنْتُمْ عَابِدُونَ مَٓا اَعْبُدُۚ (٣) وَلَٓا اَنَا۬ عَابِدٌ مَا عَبَدْتُمْۙ (٤)
وَلَٓا اَنْتُمْ عَابِدُونَ مَٓا اَعْبُدُؕ (٥) لَكُمْ دٖينُكُمْ وَلِيَ دٖينِ (٦)

سُورَةُ النَّصْرِ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ ثَلَاثُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
اِذَا جَٓاءَ نَصْرُ اللّٰهِ وَالْفَتْحُۙ (١) وَرَاَيْتَ النَّاسَ يَدْخُلُونَ فٖي دٖينِ اللّٰهِ
اَفْوَاجًاۙ (٢) فَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ وَاسْتَغْفِرْهُؕ اِنَّهُ كَانَ تَوَّابًا (٣)

سُورَةُ تَبَّتْ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ خَمْسُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ
تَبَّتْ يَدَٓا اَبٖي لَهَبٍ وَتَبَّؕ (١) مَٓا اَغْنٰى عَنْهُ مَالُهُ وَمَا كَسَبَؕ (٢) سَيَصْلٰى نَارًا
ذَاتَ لَهَبٍۚ (٣) وَامْرَاَتُهُؕ حَمَّالَةَ الْحَطَبِۚ (٤) فٖي جٖيدِهَا حَبْلٌ مِنْ مَسَدٍ (٥)

## 111. SÛREYA MESED

*(Sûreya Mesed, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û pênc (5) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û yazdemîn e. Navê sûreyê ji peyva "Mesed" tê ku ew di ayeta pêncemîn de dibore û di maneya werîsê ji lîfên xûrmeyan tê çêkirin. Mijara sûreya Mesed, Ebû Leheb û jina wî Ummû Cemîl e. Ji Rasûlullah (ass) re dema wezîfeya teblîxa îslamê hate dayîn, wî jî xewas û giregirên Qûreyşîyan li girê Safa civand û wan bal bi tewhîdê ve dawet kir. Ebû Leheb qehirî û jê re got: "Destê te hişk bibe, ma te em ji bo vêya li vê derê civand!" Li ser vê bûyerê ev sûre nazil bû. Jina wî jî sitirîya li ser rêyên ku Rasûlullah (ass) diborîya direşand da ku ezîyetê bide wî.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Her du destên Ebû Leheb hişk bibin! Jixwe hişk jî bûn.

**2.** Malê wî û ya ku bi dest xistîye tu feyde neda wî.

**3.** Wê bikeve agirekî bi alav.

**4.** Jina wî jî hemala/barkêşa dara/êzinga ye.

**5.** Bi werîsekî di sitûyê wê de lihevhûnayî (wan daran/êzingan dikişîne).

سُورَةُ الْإِخْلَاصِ
مَكِّيَّةٌ وَهِيَ أَرْبَعُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
قُلْ هُوَ اللّٰهُ اَحَدٌۚ ﴿١﴾ اَللّٰهُ الصَّمَدُۚ ﴿٢﴾ لَمْ يَلِدْ وَلَمْ يُولَدْۙ ﴿٣﴾ وَلَمْ يَكُنْ لَهُ كُفُوًا اَحَدٌ ﴿٤﴾

سُورَةُ الْفَلَقِ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ خَمْسُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
قُلْ اَعُوذُ بِرَبِّ الْفَلَقِۙ ﴿١﴾ مِنْ شَرِّ مَا خَلَقَۙ ﴿٢﴾ وَمِنْ شَرِّ غَاسِقٍ اِذَا
وَقَبَۙ ﴿٣﴾ وَمِنْ شَرِّ النَّفّٰاثَاتِ فِي الْعُقَدِۙ ﴿٤﴾ وَمِنْ شَرِّ حَاسِدٍ اِذَا حَسَدَ ﴿٥﴾

سُورَةُ النَّاسِ
مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ سِتُّ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
قُلْ اَعُوذُ بِرَبِّ النَّاسِۙ ﴿١﴾ مَلِكِ النَّاسِۙ ﴿٢﴾ اِلٰهِ النَّاسِۙ ﴿٣﴾
مِنْ شَرِّ الْوَسْوَاسِ الْخَنَّاسِۙ ﴿٤﴾ اَلَّذ۪ي يُوَسْوِسُ ف۪ي صُدُورِ النَّاسِۙ
﴿٥﴾ مِنَ الْجِنَّةِ وَالنَّاسِ ﴿٦﴾

## 112. SÛREYA ÎXLÂS

*(Sûreya Îxlâs, Mekkî ye (li Mekkeyê nazil bûye) û çar (4) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û dozdehem e. Sûre, navê xwe ji peyva îxlâs sitendîye ku tê ser maneya dilsozîtî û bi dil û can girêdayîbûna îslamê. Ji ber ku bi kurtahî bawerîya wehdanîyeta Allah (ac) radigihîne wek "Sûreya Tewhîd" jî tê zanîn. Peyvên Ehed û Samed ku di her du ayetên pêşî de diborin wehdanîyet û yekanetî û bê menendîtîya Allah (ac) îfade dike. Sûreya Îxlâs, li gorî hedîsa Rasûlullah (ass) di berdêla sêyeka (1/3) Qur'anê ye. (Tefsîra Ibnî Kesîr, Cild,12 Rûpel, 332)*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bibêje: "Ew Allah (di zat û sifet û fiêlên xwe de) wahid/yek e.
**2.** "Allah (ew ê her tişt hewcedarê wî ne û evdên wî bi dûayê berê xwe didinê) Samed e."
**3.** "Ne kes jê welidîye û ne jî ew ji kesekî welidîye."
**4.** "Qet tu tişt ne hempayê/ne himkûfê wî ye."



## 113. SÛREYA FELEQ

*(Sûreya Feleq, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û pênc (5) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û sêzdemîn e. Sûre, navê xwe ji peyva "Feleq" ya di ayeta yekemîn de dibore sitendîye û tê ser maneya "ronahîya sibehê." Ayeta pêşî bi emrê "xwe bi Rabbê feleqê/sibehê biparêzê" dest pê dike. Sûreya Feleq, bi sûreya Nâs re wek "muawîzeteyn/du parêzvan" tê binav kirin. Di ayetan de tarîtîya zilim û cehaletê û wekî kîn û hêrs û şehwet û hesûdî ku derûnîya însan tarî dike tê îfade kirin û pêdivîtîya xweparastina Allah (ac) hatîye danezanîn.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bibêje: "Ez xwe bi Rabbê feleqê/sibehê diparêzim."
**2.** "Ji şerra/xerabîya tiştên xuliqandîye"
**3.** "Dema tarî dibe ji şerra şevê."
**4.** "Ji şerra wan jinên (sêrebend ên) pif dikin girêkan."
**5.** "Û dema ku hesûdîyê/çavnebarîyê dikin ji şerra hesûdan!"



## 114. SÛREYA NÂS

*(Sûreya Nâs, Medenî ye (li Medîneyê nazil bûye) û şeş (6) ayet e.)*

*Di Qur'anê de sûreya sed û çardemîn e. Sûre, navê xwe ji wê peyva "Nâs/Însanan" ku dawîya her ayetê de dibore sitendîye. Di her sê ayetên pêşî de balrakêşîya sifetên Allah (ac) yên "Rab û Melîk û Îlah" hatîye kirin. Di sûreya Nâs de tiştên divê ku însan ji xerabîya wan xwe bispêre Allah (ac) hatîye emirkirin.*

*Bi navê Allahê Rahmân û Rahîm*
*(dest bi xwendinê dikim.)*

**1.** Bibêje: "Ez xwe bi Rabbê însanan diparêzim."
**2.** "Melîkê însanan."
**3.** "Îlâhê însanan."
**4.** "Ji şerra wî (îblîs) ê pirzêde wasewas dide û (dema Allah tê zikirkirin) xwe vedişêre."
**5.** "Ew e ku, wasewasan dide singên însanan."
**6.** "Yên ji cin û însanan."

